# NAVEROK

SAL 2
HEJMAR 24

YEKŞEMB
1 NÎSAN 1934

# HAWAR

ANNÉE 2
NUMÉRO 24

DIMANCHE
1 AVRIL 1934

KOVARA KURDÎ ★ REVUE KURDE

## DI VÊ HEJMARÊ DE



## BIRÊ FRENSIZÎ



ÇAPXANA MIDHIK-EL-MIBKÎ
ŞAM—1934

SAL 2
HEJMAR 24
YEKŞEMB
1 NÎSAN 1934

# HAWAR

ANNÉE 2
NUMÉRO 24
DIMANCHE
1 AVRIL 1934

KOVARA KURDÎ ★ REVUE KURDE

## K—Q

**Di elfabêya me de ev du herf bi hev guhêrîne: « k » ketiye şûna « q » ê, û « q » ketiye şûna «k»ê.**

## KURD Û KURDISTAN

### BI ÇAVÊ BIYANÎYAN

—3—

Me jor de tixûbên welatê kurdan gotî bûn. Welatê wan li bakur ji cihên bilind ko bi darên mazî û berûwê dorgirtî ne, dest pê dike û hin bi hin ber bi nivro nizm dibe û digehe çolê. Li serê çiyayên wan ên biberf kanî der dibin û çem û robarin diherikin, digehin medrebên birineê ko ji qûntarên çiyê ber bi deştê ve drêj dibin.

Di cihên bilind de çandinî kêm in. Ji ber ko gava di beriyên bêdar û bej de roj her texlît zad û çandinî şîn dike, digehîne, serê çiyan hêj bin berfê de ne.

Li gundên kurdan bergehekî spehî heye. Gava mirov nizingî wan dibe tof tof darên gwîz xwe şanî didin. Di bin siha wan a pehn de xanî veşartî ne.

Ji rexê din dora kanî an keviyên robaran bi spîndaran xemilandî ne. Di tu gundî de ev ne kêm in. Ji xwe ev spîndarên ha di lêkirina xanîyên wan de bingehekî mezin in.

Ev dar, têr-avexwarî û li bin rojeke geş, di zemanekî kin de digehin drêjahikê welê ko mirov li wan ecêbmayî dimîne. Wek zilên zevîyên ceh û genim li rex hev himbêz, bedenên wan zrav û rast, mîna nayan bilind dibin.

Li gora nizm û bilind bûna cihê avahîyê, dora wan de rez, darên zeytûn, bistan û zevîyên ceh û genim hene.

Lê di gundên kurdan de, kêm têtê ditin ko minareyek bi ser wan keve. Ji vajî ve gundên tirkan, ên kiçiktir jî tucar ne bêminare ne. [1]

Dîwarên xanîyan bi kerpîçên ko bi herîya kakirî tête birîn,lêdikin; bê tu dar û dep. Li şûna penceran di jorê dîwaran re qulan vedikin. Ev qulên ha bi tu tiştî ne girtî ne. Ji ber ko hatinditina pîpok û kaxezê li wir hêj ne nas e.

Derîyê xanîyên xwe ji darê berûwê pihêt çêdikin. Di ser dîwaran re bi bihustek an bi du bihustan ji hev dûr, beştinen spîndaran drêj dikin, û bi mirdiyaqan neqeba beştan dadigirin û axê berdidin ser. Qederê pêki, pêyek û nîv. Ev e, banê xanîyên wan.

Li Havînê, kurdmane di ser van banan de dinivin; û pericar ev banên ha bi dîwarekî çarpê bilind,dorgirtî ne. Ev dîwar şûna sîngtaldekê digirin. Xanîyên maqûlan jî di vî şiklî de ne. Tenê du tayên wan hene û carinan bi milekî wan ve burceke çarparsû bilind dibe.

Belê xanî bi her tiştên xwe welê hatine lêkirin ko di wextê şer û pevçûnan de bi kêrî wan bên, ji wan re bibin şergeh û asêgeh.

Di hundirê xanîyan de ji aliyê malê pêve mezeleke mezin têtê ditin. Mezela rûniştinê û mêvanan. Li mezelê de tifikek heye. Ji her du milên tifikê ve du dikanên nizm, lê raxîstî radibin û tên heta derî. Çend balgih li ser in. Raxera koçka maqûlan bi mehfûran xemilandî ne. Tevayîya raxistina wan ev e. [2]

[1] Ji ber ko em kurd tucar Xwedê ji bîr nakin, û ew di her derê de bi me re ye. Jû pêve kurd bêyî ko xwe bigihînin hev û herin mizgeftê dikarin nimêja xwe bikin. Ji lewra ko em ne li xênî lê li xwedîyê xênî digerin.

[2] Welê dixuye ko Marşal tenê xaniyên kefxwê û kiziran ditine. Ji ber ko herwekî em dizanin xaniyên serokên eşiran bi awakî spehî raxistî ne, û bi xeml û xêz in.

Gund di nav hev de, bi şiverênen teng bi hev re girêdayî ne. Şiverênen welê ko hêstir bi xwe bê talûke tê re nikarin derbas bibin. Ev rê ji bona suwarên nehînbûyî tiştekî gelek dişwar û bitirs in.

Her cih û welat di nav xwe de debara xwe pêk ditîne û heweedarî ê din nabe. Ji xwe naxwazin dan û standina wan bi xelkê dorê hebe.

Jin kirasê penbû û nîvhevrîşim, cawê sor û reş-xêzkirî çêdikin. Bi vî cawî şalên mêran ên fireh, û şapikên wan tên çêkirin. Jû pêve jin bi çêkirina eba, kulav û kumên wan ji mijûl dibin.

Mehfûrên xwe, ko xemla xanîyên wan a bingehî ye, an li erdê raçandî an li levnê vegirtî, çêdikin. Mêr bi cotkariyê mijûl dibin, diçin ber pêz, qelûnê vedikişînin; an ne di şerî de ne.

Texmînkirina nifûsa kurdan tiştekî dişwar e. Lê herhal ji nîv milyonî ne kêmtir in.[3] Piraniyeke wan misilman e. Di tixûbên ecem de kurdên fileh jî hene. Li Şingalê û ber bi nivroyê wê ve, kurdên êzîdî rûdinin. Ji ber tirkan ve êzîdî ji (......) re dîparêzin û ji lewra kirîn û firotina wan re destûr heye. Filehên ermenî ko di nav wan de rûdinin û ji wan ne kêmtir in, tev de filehên ortodoks in.

Di navbera hemî kurdan de mişabeteke milî heye. Heçko demînin hev. Rengê çermê wan bi qasî yê tirkên dorê û ermeniyan ne esmer e. Kurd bi piranî bejnbilind û bi dest û lep in. Difna wan wek tewandî ye. Lê çavên wan gelek nizingî hev in, û bergehekî wan welê heye ko mirov dibêje di kortikên xwe de qey dibrûskin.

Kurd di gerandina avê de gelekî şehraza û hinerwer in. Bêyî tu aletan, cihên avê ji kanîyên cihên bilind de rawestayî, dibin û digehînin pal û kaşan. Ji kanîyê bi saetan ve dûr. Heta wê dera ko şînahî hewcedarî avê ne. Ji xwe di wan doran de, ji her texlît şînahiyan re av divêt.

Pericar palên çiyan heta bi bilindahiyeke ecêb, şehnişînwarî tebeq tebeq, mîna diyarên bi serhev, ajotî û avakirî ne. Wek rezên me ên çêtir-xebitandî.

[3] Dîsan ji kurdan herçî Marşal bi xwe ditine, ne hemî kurdistan û tevayîya kurdan.

Belê kurd ji bona destxistina bihustekî erdê çandbar û danîna daran holê dixebitin. Zevî û awayê gerandina avê ji bona kultûra [4] miletê kurdan birhaneke bes e.

Belê welat û ezmanê vî miletî ê zelal ko bi tevayîya giyanê xwe pê girêdayî ne, holê ye.

Di sala hezar û heştsed û sih û heştan de Hafiz paşa bi ser Çiyayê-Xerzan de girtî bû; û bi şûr û agir xelkê wî ajotî bû heta bilindcihên çiyê, deverên asê, nav ferş û zinaran de.

Xelk liber disekinin. Hetanî ko zad û qût dest bi kêmbûnê kirin. Hingê rîspiyên wan li der konê serdarê mizefer de xuya bûn. Jê efwa xwe dê bixwestana.

Paşê ji bona xistina vî xelkî bin destê hikûmeta xwe ji rakirina wan ji wan çiyayên asê pêve tevdîreke din nizanî bû. Belê dilê wan hebû wan ji cih û malên wan rakin, bibin deştê û li wê derê bi cih kin

Paşa gelek tişt ji wan re wad dikirin. Paşa di cihekî welê de dikarî bû bi qima dilê xwe comerd û destvekirî bibe.

Ji wan re digot ko, li deştê, ji her yekî wan re, ji erdê wan deh caran bêtir erd dê bihata dayîn. Dîsan sê salan, ji wan ne qemçûr ne jî wêrgû dê ne hata standin. Ji milê din, ji wan re wesfê dewlemendîyên deştê dida. Mîna çandina darên tû, çêkirina hevrîşim, bi xwedîkirina hespan. Li şûna ko li çiyê tûtirkan bidin hev û herin ber pêz. Lê mirov welê ji, karî bû ji masîyan daxwaz bike, ji xwe re torekê çêkin

Rîspî bi çavên zelûl li ezmên fedkirin û tiştên ko ji wan hatî bûn xwestin, pesnê wan dan, û tev xelatkirî dan rê û vegeriyan nik yên xwe. Tiştên ko seh kirî bûn, ji mirovên xwe re gotin. Cih de jin û zaro rahiştin tifingên xwe. Kuştar ji nû ve dest pê bikirana. Her wekî dest pê kirin jî. Û hetanî ko ser-

[4] Di hejmara Hawarê a nozdehîn de me ji kultûrê re çand gotî bû û di ferhengokê de bi awayê jêrîn mana kirî bû: «Ji tevayîya ilm û hiner û pîşeyên spehî re çand tête gotin. Me ev pirs ji çandinê girt. Ji xwe di her zmanî de ji welê ye. Çand an kultûra ewrêpayî: tevayî û awayê zanîna xelkê Ewrûpayê ye. Em dikarin bêjin Çanda Kurdan jî. Pê dîrok, çîrok, stran, dîlan, mamik, medhelok û her texlît pîşe, rêzik û adetên me, têne seh kirin.

xwerabî bi temamî ne hatine kevandin, kuta ne bûn. Lê hikûmetê bivêneve dev ji istîmara Kurdistanê berda. Ji ber ko bi ceribandinê têgehiştî bû ko proja rakirina kurdan ji çiyan û cihkirina wan deştê nare serî.

Kurdistan seranser ji komên gundên jihevcihê pêkhatî ye. Carinan çavê mirov di sinên çiyan, an di nav ferş û zinarên asê de, bi burcekê dikeve.

Ev burcên ha xweserî hin began in. Lê beg bi xwe hergav tê de rûnanin. Tenê di zemanê tengî û talûkê de di kevin-ê; û ew ji wan re dibin asêgeh.

Ev mîrekên ha, cuda cuda, di nav xelkê xwe de rûdinin. Destê tukesi de birekî welêt ê mezin nîne. Tenê di wextê tengî û talûkê de mirovên wek Begê Rewandizê, Bedir-Xan Beg û Seyid Beg, birek ji xelkê xwe didin hev, dixin bin alên xwe û leşkerekî xurt ditînin pê. Lê piştî ko talûke dibore û mesele safî dibe, leşker ji hev dikeve û ji mezinê xwe vediqete. Ji xwe herkes tenê kerîyê xwe diparêzine.

EVE QELSÎYA VÎ MILETÎ. HEKE YEK BUWANA, DI NAVBERA WAN DE TIFAQ HEBUWA EV MILETÊ HA NE DIHATE KEVANDIN Û MEẌLÛB KIRIN. LÊ GAVA YEK DIKEVE TENGÎYÊ ÊN DIN DI CIHÊN XWE DE RÛDININ, ARÎKARÎYA WÎ NAKIN. HERWEKÎ GAVA REŞÎD Û HAFIZ PAŞA DAJOTIN SER WELATEKÎ ÊN MAYÎN LI CIHÊN XWE DIMAN, BI AZAHÎYEKE YEKROJÎ ŞA Û KÊFXWEŞ DIBÛN, HETA KO DOR DIGIHA WAN JÎ.

Ber bi nîvro, di berîyê de kurd gihane tixûbên xwe ên tebîî. Erebên ko yekcar vajîyê vî miletî ne, ẍarên wan ên paşin ji hev de xistine û ew sekinandine.

Herwekî şêrê ereb nikare şahînê kurd di bilindcihên xwe ên asê de biqefiline, kurd jî welê, di berîyê de nikare wî bike bin destê xwe, hetanî ko ji hawîrê xwe dernekeve.

Dijminê wan ê xedartir, heke yekcar ji xurtîya xwe ne ketî buwan, diviya bû cemên hevtixûb bibin.

Lê ji herkesî zêdetir, xwe ji paşayê Beẍda û Diyarbekrê diparêzin. Ji lewra ko wî wextî, liber destê hikûmetê û di wan doran de, leşkerekî bi pêncî hezar peyayî û karkirî hebû. (dûmahik heye)

HEREKOL AZÎZAN

# ÇARÎNÊN XEYAM

Da, ji xweşdiliyê tinê nav maye
Wey hevalê gihayî, şeraba xav maye
Destê xweşiyê, ji şerbikê şerabê mekişîne
Îro ko destê te de, tinê piyan maye

☆

Heya kengê gotina çar û pênc, ho meyger
Çi yek, çi hezar;seh kirin dişwar e,ho meyger
Em hemî, ji axê ne; kemançe werine [ho meyger
Em hemî ba ne, şerabê bîne ho meyger

☆

Ho çerxê! tu her, dilê min ẍemgîr dikî
Kirasê min, yê şahîyê zirzir dikî
Bayê ko li min dide, av dikî
Ava ko vedixum, devê min de ax dikî

☆

Ho gulê! tu wek rûyekî dilhevîn xuya dibî
Ho şerabê! tu wek lêva canrevîn xuya dibî
Ho bextê şerût, tu bi min re
Her dilsar î, lê ẍemrevîn xuya dibî

☆

Destê te de yaqûta ruhn heye, ho meyger
Dilê min wek yaqûta ronak ke, ho meyger
Piyaneke dagirtî bide destê min, ho meyger
Da ji şerabê dilê xwe jîndar kim, ho meyger

☆

Çendan li dora xwe dinêrim
Ji çemenan, bihuşt e; ji kewserê, çem
Deşt wek bihuştê ye; gotina dojehê berde
Rûne vê bihuştê de, bi delaleke bihuşdem

☆

Ronî û şerab û tava heyvê, ho meyger
Û delaleke yaqûtreng û nazdar ho meyger
Şerbikekî şerabê bide min berî ko
Şerbikan çêkin ji axa min û te ho meyger

☆

Dema spêdeyê ye, delala qedrgiran
Lêva te bi stran be, destê te bi piyan
Bi hezaran Cem û Key xistin erdê
Ev çûyîna Tîrmeh û hatina Galan

☆

Sibeh e, xweş e, dilxweşî ye; ho meyger
Ko şeraba şevê maye, piyanê jê dagire [ho meyger
Piyanê bide destê min û qedrê vê demê bigire
Sibehê bibî livînê aqidê, ho meyger

☆

Di vê rêya ẍedar de bi dilnermî bijî
Hevqas xema dinê mexwe şa bijî
Da ko paşayîka vê dinê, neyîn e
Xwe tune hesab bike û aza bijî

Dr. K. A. BEDIR-XAN

# DELALÊ BERÎYÊ

## JI DEVÊ EHMED FERMANÊ KÎKÎ

— 1 —

Hay lo dilo! . . . . . . . . .
Emrê dilê min pê ra, de bajo
V' êvarê mi rebenê! . . . . . .
Tu carê li darê dinyayê
Nabe tu peya bi
Li ser bozê qesirandi
Dêl û biji bi hena bi . . . .

— 2 —

W' ez tu nifira li bejna delêl nakim
Li Beriya-Mêrdînê, li Kepezê-Kîka, erdê
[bêpiva
Bira li delêl derkeve xarek, mina xarê şemera
Suwarê seklawi li delêl kar bin
Erdê bêpiva, li ci xa' ber' dir, ga' nê xwe
Jêdikin[1]
Bihustê lawê bava bi Jire be
Mêrê xerab ji mêrê çê bi şade be
Destê xorta dizgînê negire
Lingê lawê bava di rikêbê nesekine

— 3 —

Şadê-şûdê delêl gelek hene
Bû hefadê koçan û keriyan
Navê revê, delal heram e
Delêl were malê me va ne
Serê stûna kona nizik e, j' te bi xuya ne
Tevdana sing û berê min, xezalê!
Ji eşa pêve, li nefsa canê delêl
Suwarê seklawîya helal be

— 4 —

Di v' êvarê, emrê dilê min pê ra
Bira li me ne hata ji ba
Bayê xerbî zîneta rûkê dinê
W' ezê bala xwe didim-ê, maqûlê di kika
Kişane oda bavê Bişar
Şêwr û mişêwrê roja barkirinê

— 5 —

V' êvarê xewa xelkê delal di paşila min
[de naye
Nizam delal girti sar û germê
Ezê nizam delal nexweş e
W' ez nizam seklawî ranê delêl kutane
Nizam wa ê mala bavê min kevn bûne
[kêç ketin-ê

— 6 —

Di v' êvarê, delal, minê ji gira girê kew keyo
Ketim rêz û koçan û kerîyê di kîkan
Xelka min e delal, liser nag û delûlan
[girtiye todeyo
Minê nihêrî bejna zirav, mina seklawi,
[seklawîyê Bavê-Bişar
Li der konê Bavê-Bişar bisekine, bêreşmeyo

— 7 —

V' êvarê . . . . . . . . .
Seyda lawikê xelkê delal teyr û tivilkê
[dora mala bûn
Seyda xelkê min î delal, xezala serê geleyo
Delal de rabe destê xwe bi destê min de
Emê hevdi birvinin; xwe bidin dora
[Xabûrê-Begara
Bira Girê-Mixergan ji min û xelkê delal ra
[bibe sitareyo

— 8 —

V' êvarê . . . . . . . . . .
Ezê daketim Beriya-Mêrdînê, ji dilê min
[rebenê! beriya berê
Lê şin dibû kulilka qewanê, tûmê di xerdelê
Salê-çûnê ez xwestika xelkê delal bûm
Sala vê salê, ketim tora yeki pîsê mirdar
Roja barkirinê, li dewsa koç û wara dimam
Darê dergûşê li min bû bela
Mirata kitanê, li min rebenê, bû baskê
[di qertelê

— 9 —

Di v' êvarê . . . . . . . . .
De bajo, rêdûro bajo, betilîyo bajo,
[heyiriyo de bajo
Li ber germîya havînê rûmene, vê sibekê
[tuê bigirî sar û germê
Serê te biêşe, tuê nesax bikevî
Di welatê xerîbiyê, bi emelê serê min bi

— 10 —

Hay lo dilo! . . . . . . . .
V' êvarê minê Çaxirbazara şewiti
Mi ne diye, bi saxlûxdana, bi çava ji min dûro
Sing û berê min rebenê!
Vê sibekê mina baxçeki, ji baxçeyê Nisêbinê
Mina mêrgê, ji mêrgê Tilkermê
Hawik, ji hawîkê dora Xêbûro
Emrê dilê min pêro
Were delal tewafa sing û berê min, rebenê!
Serê xwe deyne rakeve
Ev stêra li me der bû, Stêra-Karwanqiranê
Serê xwe deyne rakeve, Stêra-Sibê li me dûro

— 11 —

Dere, hey lo, dilo . . . . . . .
Delal tu terka min bidî, ez terka te nakim
Lo! lo! melûlo, xempiro, keserkûro!
De bajo rêya te dûro! . . . . .
Îro du ro ji sîng û berê min, rebenê! mazûlo
Xwezîka min xelkê delal bidiya
Mina dewr û dewrana ewilî, tev selefê
[Bavê-Bişar
Beriya-Mêrdînê, ser pişta hemdanîyê
Vê sibekê li hawîkê dora Xêbûro

— 12 —

Heylo! . . . . . . . . .
V' êva rê emrê dilê min pê ra

[1] li cihê xamberindir guhanê xwe

Vê sibekê karê tev bizinê, diçêrin li pozê
[Çiyayê-Şingalê
Cilê delêl hatine ber şuştinê
Ezê bistinim qalûbek sabûna Helebê
Bişom ser ava Zirganê
Bisom, lêkim ava mawerdi, ezê raxim ser
[darê qurnefilê
—13—
Di v' êvarê . . . . . .
Kalekî mala bavê me heye, liber rehma
[Xwedê, roja barkirinê
Sê brê me hene, li bin darê silehê, roja
[qewimandin û kuştinê
Gava çavê min nekev, li bejna xelkê delal
Ezê berê xwe bidim, herim Midyatê
Dawa taqiya xwe bibim cem hoste Melko
[ser boyaxa reşkirinê
—14—
Dilo lo! . , . . . .
Vê sibekê xelkê min i delal çû welatê xeribiyê
Kesek li mala tunîne, w' ezê sebra dilê xwe
[pê binim
Derdê dilê min pir in, şevê kanûna
[şevine drêj in
Ezê rabim lêwik li dergûş xinim
Ji derdê dilê xwe re rebenê, bilorinim,
[bilorînim, bilorînim
Hêstirê xwînê, ser sê biskê di şê, binarê
[rûka bibarînim
De bajo emrê dilê min pê ra . .
—15—
Haylo dilo ! . . . . .
Rabe berê xwe bidin welatê Kurdistanê
Herin Diyarbekra xopan, korta gidîya
Ezê vê sibekê herim, kevirkî rakim, ji
[bedena hevsa xwîniya
Ezê wî kevirî têxim navbeyna xwe û ber vî dili
Di pey bejna delal, li welatê xeribiyê
[sebra dilê xwe pê binim
De bajo emrê dilê min pê ra, tim lo lo!
De bajo rêdûro, bajo xempiro . . .
—16—
V' êvarê ji gira, Cirê-Girdêşê, Girê-Girdêşê
Xelkê min î delal suwar bû, ciwanika ibeyê
Berê xwe da xêmê beriya jêrin
Lingê ciwanika xelkê delal li keviran dikeve
Ezê nizam teresbav solbend neçê solkiriye
Zikê min dişewite, dilê min vê ra diêşe
—17—
Keçikê digo: lo delal ez ne jin im, na bimêr im
Ez xweyînga heft bra me, wekî şêr in
Dotmama donzde pismama, suwarê
[hespê nêr in
Gava çavê min nekev li bejna delêl
Ezê herim biniya Nisêbînê
Her heft bra,donzde pismama şokê vedişêrim
—18—
V' êvarê , . . .
Heylo delal, li min û li Tilkermê
Delalê malê suwar bûye; vê royê, vê rogermê
W' ez ne ketim ber etra delalê malê
Ez ketim ber etra bi şalê sipi, bi kirasê melesî
Çûye serê kaniyê, vê sarê, vê saregermê
De bajo heyiriyo! . . ,
—19—
Heylo dilo! . . .
W' ezê diçûm ber derî, deri li min venebû
Hilkişiyam liser banê xênî, rê tune bû
Daketim aliki hewşê, min bala xwe da-ê
Xelka min a delal, li bin şibakê
Di xewa şêrin da bû
Sura bayê xerbî hati bû
Temarê li çavê min kiri bû
W' ezê bi xwe hişyar ne bûm
Çûm tewafa sing û bera, bi kilît û bi mifte bû
Ehmedê Ferman, nizam ne siûda min, vê
[sibekê, ne bextê te bû
—20—
Dere heylo . . . . , .
V' êvarê Xwedêo, rebio, minê tiştik ji te navê
Konekî çarstûnî, çîtik şikakî, navmalê
Mêkutki ji darê benavê
Minê konê delal vegirtiya
Li Beriya Mêrdinê, li Kepezê-Serê-Keniyê
Navrokê Evdiselamê . , . .
—21—
Lê, lê xezalê . . . . . .
V' êvarê tu xezala min î, xezala binê beriyê
Devî li çêrê, çavî li karê, guhî li gaziyê
Heylê xezalê . . . . . .
—22—
Vê sibekê Xwedê bikira miradê min û
[xelkê delal
Li Berîya Mêrdinê, meha Temûz û Tebaxê
Minê rojî bigirta li ser rojiyê
Xwezî ez bibuwama rimek ji dwanzde movika
Têketama ser piyê xelkê delal, suwarê
[hemdaniyê
—23—
Di v' êvarê keçikê digo: dilê min qûma ferêt e
Kosara Kika, Amûda rengîn, stûna welato
W' ez nakim terka bejna zirav, heya
[serê nin nere
Diyarbekrê, ber darê celêdo . . .
—24—
Haylo dilo . . . . . .
Lo delal, heya gava mirinê
Heya roja kuştin û qewimandinê, delal heylo
Vê sibekê tirsa min ji wê tirsê ezê bimirim
[welatê xerîbiyê
Beri kalbûnê, pirbûnê, min têr ne go
[delal heylo....

# YEWNANISTAN

## ÇAWAN BISERXWE BÛYE

Di sala hezar û pêncsed û sisê de, ango berî çarsed û sê salan Yewnanistan keti bû bin destê tirkan de. Xelkê Yewnanistanê di bin destê tirkan de, jar û perîşan bû bûn. Ne şeref ma bû cem wan, ne jî dewlemendî; çi cotyarî û çi dan û standin. Di sala hezar û heftsed û heştê de gava di navbeyna Ûrûs û tirkan de şer çêbû, yewnanan hêvî dikirin ko Ûrûs dê bibe arîkarê wan, û ji bona biserxweyîya xwe rabûn.

Tirkan zûka esker şandin ser wan, şerên mezin, şerên giran û xwîndar çêbûn, tirkan zora wan birin û eskerên wan hatin şikestin. Lê Yewnanistanê hevîna azahî û istiqlala xwe her xurtir kir. Piştî midekê şairekî yewnan, Konstantîn Rîga rabû û bidizî civateke welatî danî. Di dora wê civatê de zelamên hêja, xwenda, zana û kêrhatî gihane hev.

Di sala hezar û nehsed û heştan de tirk ketin pey konstantîn Rîga û xwestin wî bigirin. Destê tirkan nedigiha wî, Konstatîn Rîga baz da û çû Nemseyê. Tirkan ji dewleta Nemseyê spartina Konstantîn xwestin, wê dewletê jî bextreşî vê re kir û Konstantîn sparte tirkan û bi destê tirkan di bajarê Belgradê de hate darvekirin.

Hevîn û germîya Yewnanistanê sist nebû. Gund dişewitîn, bajar xirab dibûn, mêrg û ,arîzên spehî dibûn tirb û gornistan,lê di kavilên wan de gula azahîyê vedibû û xwe geş dikir. Camêr û mêrxasên nû wek Mavrokordato û Îpsilantis dest bi xebata welêt dikirin û xwe dişidandin. Dil, gotin û armanca Yewnanistanê bû bû yek. Serxwebûna welêt an mirin!!

Ji nû ve ji bo azahîya Yewnanistanê serxwerabûneke mezin destpêkir û xelkê Yewnanistanê ji nû ve ji dinyayê re da zanîn ko xwîna wan ne kerisiye û kurên kal û kalikên xwe ne, wek berê egît û gernas in; dilê wan tejî mêranî û camêrî ye.

Îpsîlantis bi duhezar zelamên mêr zora tirkan bir û tirk ji axa Yewnanistana bakur derêxistin. Lê pişt re, di sala hezar û heştsed û yekê de Îpsilantis ji şikest û revî çû Nemseyê. Serekên din dibin emrê Georgakîs de bi zelamên xwe ve di Dêra-Sekoyê de bi tirkan re şer kirin.

Tirkan çarmedora wan girtin. Yewnanan gava ditin ko êdî ji mirin an xwespartinê pêve tu rê ne maye bi mêranî êriş kirin ser tirkan û hemî di wî şerî de wekî şêran hatine kuştin.

Keşe Germanos gava şikestina welatiyên xwe bihîst xelkê dora xwe kom kir û çû ser tirkan. Di wî şerî de (15000) tirk hatin kuştin. Di wê salê û di şerekî din de Yewnanan ji nû ve (8000) tirk kuştin. Di sala hezar û heştsed û bîst û dudowan de mezinên Yewnanistanê istiqlala xwe îlan kirin. Tirkan ji nû ve esker şandine Yewnanistanê û di nav tirk û Yewnanan de şerên mezin çêbûn, gelek xwîn hate rêtin disa tirkan zora Yewnanistanê birin, (23000) zelam û (47000) jin û zaro bi destê tirkan hatin şerjêkirin.

Serkên Yewnanistanê û zelamên wan hêvî û hevîna xwe sist ne kirin, ji nû ve dest bi xebat û şerî kirin. Di sala hezar û heştsed û sisêyan de di navbeyna wan û tirkan de ji nû ve şerên mezin û xwîndar destpêkirin, Vêcar (3000) tirk hatin kuştin. Lê gundên Yewnanistanê hati bûn şewitandin, nik xelkê pere nema bû, welatê Yewnanistanê xerab bû bû. Xelk ji birçîna dimirin.

Di sala hezar û heştsed û bîst û pêncan de tirkan ji nû ve ordûyeke mezin pêk anîn û şandin Yewnanistanê. Dîsan şerên xwindar destpêkirin. Êdî wisa xuya dibû qey dema mirina Yewnanistanê hatiye; eskerê tirkan zehf û xweyçek û cebirxane bûn. Gava mêrxasên Yewnanistanê seh kirin ko êdî mirin e, destên xwe dan hev û bi mêranîyeke ecêb şer kirin.

Dewletên din heya wê demê destên xwe ne dilivandin û arîkarîya Yewnan ne dikirin. Lê gava yekbûn û yekîtiya hemî Yewnanistanê ditin dest bi arikarîya wê kirin. Ji boyî Yewnanistanê di navbeyna Ûrûs û tirkan de şerekî mezin çêbû.Tirk hatin şkênandin û di sala hezar û heştsed û bîst û nehan de Yewnanistan bû dewleteke xweyistiqlal û di sala hezar û heştsed û sihî de dewletên dinê hemî istiklala Yewnanistanê nas kirin.

Îsal sed û sih û sê sal in Yewnanistan xweyistiqlal e, biserxwe ye. Miletên hesîr û dîl ên bêtir serxwe bûn, ên mayî ji dê serxwe bibin.

Xwedê însan aza û serbest afirandiye. Em ji tu miletî ne kêmtir in. Tu milet ji miletê me ne mezintir e.

Parıs: Dr. K. A. BEDIR-XAN

## TU ÇIRE AXÊ DE YÎ?..

— Ji Mela Ehmedê Botî re —

Sadîyê şirazî, yek ji şairên Ecemistanê ê bi nav û deng e. Sadî du kitêbên mezin hiştine. Bostan û Gulistan. Gulistana wî ji qiseyên felsefî û hikemî tejî ye. Çarîna jêrîn a kurdandî ya Sadî ye. Ji yara xwe a mirî re gotiye.

Rojên Buharê ne, gul û lale û nesrin,
Ji axê dertên, tu çire di axê de yî?
Mina ewrên Buharê, herim bi zar bigirîm
Di gorna te de, ewçend ko tu jî, ji axê der bibî

REMOYÊ QENCO

6

# PENDNAME

Ezê bêjim hon dilê xwe megirin
Dinya ne bêja ye, emê tev bimirin
Mala me gelek kûr e, yek max e
Ew ji li bin şeş heft tebeqên ax e
Em tev bira ne, ji yek dê û bav
Ji miriyan ra çi maye, ji bil nav
Qet şiyar nabin, ta kengê razin
Hon mezin in, em ji we dikin gazin
Xelk dibêjin şêx û mela
Wextê zekata xwe, dibêjin bela
Çiman hezretê peyẍember gotiye
Zekatê mexwe, ger tu başimi ye
Malûmê we ye, ew qrêja mal e
Lewra ji şerifan ra ne helal e
Em bi dilê xwe tev hakim û mir in
Di zekatê de, ji qismê feqir in
Madam ko em warisê enbiyan e
Çima em xeriki karê dinya ne
Bes e, hon ji xew rabin, ez gori zû
Zarokên xwe ra bêjin ilmên nû
Çiman hezretê fexrel-alemin
Gotiye: «Utlibul ilme welew fis-sin»
Misilman kengê li Sin, hebûn, ew çax
Ax! ji derdê we şêx û mela ax! ax!
Hon dibêjin em bûne qutbê razi
Qet yek ji we nabe mifti û qazi
Hon bi van her du ritban ne razi ne
Lewra hon belengaz û pitazi ne
Hon tev mêr û çeleng û xort û ciwan
Hon ji pira parsê dikin ji bo nan
Ez mela me lewra dilê min diêşe
Xwedê rehma xwe bike di ên pêş e
Em hini tu kari ne kirin yekcar
Lewra em hêj mane tiral û bêkar
Aẍa, ez ketim bextê te û Xwedê
Ezê çend pirsan bêjim tu guh bid-ê
Binêre di bin destê de heye sed xan
Hemi belengaz û reben û gavan
Tu malê wan distini her bi dilêş
Tevi dixi . . . na memûr û derwêş
Ger we tev bidana bi top û tiving
Dê hon ji bibûna hemberi firing
Lakin çi bikim we tev da bi şabaşa
Qet kes ji we ne bû wezir û paşa
Li ser bextê min bê hon mêrê çê ne
Ax ax êsirê destê xelkê ne
Bes e, hon eqlê xwe bidin serê xwe
Destê xwe b'girin vêcar li perê xwe
Çiman ji bona ax û mal û xweli
Perê xwe didin bi hev dikin gili
Hon mala xwe bixun her yek bi serbest
Di hemberê neyaran da bibin yekdest
Ji hev ra pir qenc bin û guh bidêrin
Li çerxa felekê hon pir binêrin
Gerek ji bo neyar e, yek ji bo me
A neyar jê ra hat, a me bidom e
Em ji şûva xwe bajon û tov biçinin
Dê zû şin bê, emê wi zû bibinin
Caniman em rezeki datinin deh sal
Em naxun jê, ji karê me re dibê mal
Ewê ko çêkir vapor û balafir
Deh sal bi şûn ve ne ma çû mir
Ev tev ji me ra, rêya din û iman
Hubil-weteni delil û birhan
Ez bi xwe bê êl û eşir û ebr im
Pêlek maye emrê min, ezê bimirim
Bes ji bona we ye, ev qirqira min
Lê ez çi bikim, hon guh nadin şikra min
Hon dizanin lê hon li xwe nakin bar
Em ji, ji dilêşi dikin hawar
Fikra min maye min ev tenê dixwest
Lê ez çi bikim li vir qelema min şikest
Bi kêrê, min tûj kir serê qelema zil
We digel a lê bêjim, dibin çil
Eger hon ji gotinên min aciz bûn
Hêvi dikim efiw bikin Cegerxwin

CEGERXWÎN

# DÈRIK

Dèrika Çayê Mazî
Welatê bav û kal e
Lê sed hawar û gazi
Jê dûr ketim çend sal e

Ez li wê hatim dinê
Wê dergûşê, hejandim
Heywax hey mala min-ê
Dijminan, jê revandim

Perçake ji bihuştê
Besreka Zêrin welat
Îro dest nagehişt-ê
Ax û keser ji dil hat

Baẍ û baẍçe bê hejmar
Ci bi ci mêrg û zevî
Li her derê, avên sar
Ji kaniya tê dizî

Kulêbe bûye xopan
Dengê berê jê nayê
Temaşagaha xortan
Ji min ji sêwi mayê

Ji çiçekê rengereng
Sermest newala Govî
Çima iro naki deng
Mîna tebayê kovî

Xwezî vê carê ji min
Serê Xabê bidita
Bila ruhstin canê min
Hingê ji xwe r' bimêta

Dilê min jê têr ne bû
Ax! ew Asraka Berxêr
Gelo ew roj heye ko
Dîsa bibinim bi xêr

Guher hêsa ne dibû
Ji keçên hustû-b' morî
Çavê min li wê vebû
Dilê min jê ra gorî

Mancêl û Kanî-Hinar
Gorinê birê min in
Îro bibe pirsiyar
Cuwahê derdê min in

Reha-Reş û Lata-Sor
Yek sorgul e, yeke mor
Bîn bikim ez dor bi dor
Têr nabim hetanî gor

Du textê Qizê-Qirêl
Hemberi hev dinêrin
Li ser wan xweş qelisêl
Gurçik û dil çedibin

Xwedê kerem bikira
Bibama teyrekî baz
Li wan cih li wan dera
Bigerim perwaz, perwaz

Dèrika Çayê Mazî
Welatê bav û kalan
Dîtina te dixwazî!
Newzad: ji te ra heyran

NEWZAD

Ji Starnên Cihê Botan:

# KÈRE

Bihar xweş dibê binê vi Seqlanl
Heşin dibê kulilka ketê, ya vi bêrzanî
Xwezî ez bibiyam mihkeke kurebazi
Sê şeyên çile û kanûnê, berf û bagerê
Min serê xwe bikişanda bin kulavê te şivanî

Diliki min, dilki bi heyhêz e
Bêri û berivan ji malê me bêne rêz e
kesik ne diye ser dewr û zemana, hakim
[bigirin şivanê ber pêz e

Xwezî ez bibiyam qurmilo
Ez biketam hêrikê Qereçox, erdek silomilo
Keçikên Mûsereşa, Xêrka, Teya, Mira
[bihetan, ez bêxistam milo
Ez bibiram sûka Cizirê bidam bi
[sibhan û kilo
Biantiya bêxista çehvê rastê, ê çepê
[bima wilo

Diliki min bi heykêr e
Çehvê min yek heyv e, yek stêr e
Memikên min yek mizgeft e, yê di dêr e
Du kelmî navbeyna sing û berê min der bine
Yek Rûsor, ye di Spîpêl e
Heçi nexweşê ev heft sal bi
Ser piştala xwe ranebi
Firkê jê vexwê, roj bi roj her bi xêr e

Ezê bidim te, banê Bamêş bi pûş û pelêş ve
Ezê bidim te Seqlên bi êş ve
Ezê bidim te, Sûka-Tari bi tewbên qumêş ve

Mirê min, agir bikevê Banê-Bamêş,
[pûş û pelêş ve
Serê şapê pêde bê, Seqlan bi êş ve
Xwedê xerab bikê Sûka-Tari, bi tewbên
[qumêş ve

Tu lawikê min berde malên me çûne
[zozana, her beleka
Warkoza mi biye Banê Xanê, germa
[Havinê li şûndewsa koz û kuleka
Dewleta mîrê mi mezin bê

# RÈDÛR

Èvar e, çaxê hevira
Ti li serê xelkê delal şar û momi ne
Keçikê digo: kuriko devê xwe ji xal û
[nişanê gerdena min berde
Kuri digo mala bavî şewitiyê! xema nexwe
[stêra sibehê li me dûr e

Vê barmê lez ke, lez ke
Ti li serê xelkê delal şar û momi ne
Bejna te nazikê, enterikî tim i kesk e
Ji nimêja meẍrebê ezê diçûm tewafa xal
[û nişanê gerdenê
Heta spêda sibê dibi şerê simbêlê sosinî
[qoce biska
Mi di ti li kolanê, Xidir-Mame da
Minê dawa enteriki Şamê girt û
[qet berneda
Ji nimêja meẍrebê ezê diçûm tewafa sê
[biskê di şê
Heta fecara sibê min terka cotê
[zermemika ne da

# MEMOKÈ

Hey lê Memokê ciwanê diliki kûl bişoz e
De ti li min veke beri û bişkoja
Dinya li min cineta baqi bi, te li min
[kir-ê doje

De rabe Memokê ciwanê, te singsuhrê
Bi xet û bi xal û bi nişanê
Te li min xira kiri bi dergehên Colemêrgê
Baẍ û baẍçeyên Wanê

Sibe ye, sê mala ji gundê me bar kir
Heylê ciwanê, Memokê l te singsuhrê bi
[xet û bi xal û b' nişan kir
Memoka min ji eslê mala bavê xwe delal e
Te mala lawika li min xira kir

STRANVANÊ JÈLİYAN

# MIJDE

## BO LAWANÎ KURD

Lawani kurd! mijde bê lêtan, le paş şeş mang diyar nebûn, ewa emro ewel nûsawi Hawar le bin çap da hate derewe. Ey brale bizanin ke hemû miletêk be zmaniye we nasrawe, we enasire. Ke zman ne bû hiç ştêki tir bûnî we pêkhatinî dirist nabê.

Bo jiyanewe we serkewtinî zman nûsin, bilaw kirdinewe, we rojname pêwist e. Temaşa keyn lem peri Kurdistane we, bo ew peri, le sere we, bo xwarewey taw deyn le sê çapxane bew lâwe nabinin. Yekekiyan çapxaneyî Jiyanî Silêmanî ye. Ke emeş le bexêr-hatinî piyawekî gewre, heracî milk, êlanî tapo bew lawe ştêkî tirî tiya niye. Duwemîn Zari Kurdmancî ye. Ke hî piyawekî feylesofî pirqiymetî xoman e. We hemû pûl û pareyekî lew çapxane da xerc kirduwe bo berzbûneweyî zmanî kurdî we le çapdanî kitêbi pêşinanî bêhawta, le paş ewe ke hiç yarmetî le ême ne dî ewa ewiş hate halî bêxwedı.Sêyim Hawar, hawar e.

Hawar wekû hemû ezanin hedefî esasî berzbûneweyî zmanî kurdî, yekxistinî her du zman e, yanî kurdî serû û kurdî xwarû we.

Ey beçkeşêranî niştiman, ey ew kesaneyî ke xwênî germî pakî kurdayetî le leşa ecûle, ey ew kesaney ke bo berzî zmanî wilat hewl eden, himet biken, tê bikoşin bo jiyaneweyî hawarman û zarman. Nûsrawekanî wilatike bibînin we tozî dilman be hî xoman we xoman bisûtê. Bo çî êmeş hewl nedeyn legel xêwî em du çapxane be nirxeman da bo berzî we yekyetî zmanman.

Ême ke wilatî xweşewist çawerewan mane zmanî xoman herz nekeynewe, kê hewlman bo eda, kê bo zmanman tê ekoşê. Bo çî her yekî le ême carî be yek du çiroki kurdî xoş ke her kurdêk sed ezanê, hemû rûperey bew çiroka bêhawta felsefiyane nerazenine we, bo çî be hasî xo parastin le nexoşî pir nekeynewe, bo çî dawa kirdinî pêwistî wilatî tiya bilaw ne keynewe?

Brakanim, bizanin ke jiyanî nûsrawî man be ême we bestrawe, berzî ême be berzbûneweyî zman mane we ye. Yekyetî ême be yekyetı zman mane we ye. Nabê xoman bo fewtanî xoman hewl bideyn. Têkoşin, be mal û be pare bo berziyî zman man wacib e leser hemû laweki dilsoz.

Ey brale, bo çî ta êsta hêştûmane em du nûsrawe man bixewin. Bam hewl bidên bo hoşhênanewe seryan bo xizmetî niştiman.

Le paş em nûstine zoreyî haware itirhiwam waye hemû laweki dilsoz hewlî serxistinî bida we bo pir kirdineweyî beynî kolekekanî le hemû nûsrawêkî tira nûsin be zmanî xoman, kurdî xwarû, tiya bibinin bo ewey ke be her du zman ew xizmete ke Hawar hewlî bo eda pêk bêt.

LAWINÎ PIJDERÎ

# ÇÛK Û FÎL

Dibêjin carekê çûkekê hêlîna xwe nizikî rêya avexwarina fîlekî de çêkiri bû. Hêk û ferxik jî tê de kiri bûn. Fîl weke adetê xwe ê berê tê re borî, da avê vexwit. Dît ko hêlînek tejî hêk û ferxik wa li ser rêya wî de ye, anî pê lê kir. Hemî kuşt û şkênandin û çû ser avê. Gava çûk hat û dît ko ne hêlîn ne tiştek xuya nakin, hemî di vî halî de ne, yanî ev neqencî û xirabîya ha ji fîlê ye. Çûk firî û liser serê fîl danî û jê re got :

— Ya melik te çire ev şûret serê min de aniye, le ez di darê dinyayê de tinê hêliştim. Ser vê qasê re em ciranên hev bîn û ez digel te bê ẍalî-ẍarez bûm. Te ez kiçik û reben dîtim ji lewre te hûsan li min kir. Fîl lê vegerand û got:

— Belê herweki te gotî wisa ye. Ji lewre min ev li te kir.

Çûkê berê xwe jê wergerand û firî çû bal koma teyran ve û giliya halê xwe li nik wan kir, û serhatiya xwe ji wan re got û ji wan daxwaz kir ko bên hawara wê.

— Teyrino hon digel min werin em tev de biçin bal fîl ve û danîn ser serê wî û çavên wî binikilînin, biqoqilînin. Dîsa ezê tepeke dî jî lê bikim.

Teyran gotina wê dirist dêran û milên xwe dane hev û çûn liser serê fîl danin û çavên wî dane ber nikilan, heta kor kirin û ew ji qoqikên xwe rijihan.

Fîl bê ronahî û xwarin û vexwarin ma, cihê xwe de. Dike hawar û zar-zar. Mêş û mêriyan girtin kiloxê wî û qoqilandin û dest bi xwarina goştê wî kirin.

Çûkê, dîsan xwe jê ne da paş çû bal çaleke ji wan ên têrbeq ve û serhatîya xwe ji wan re jî got. Beqan lê vegerandin:

— Hey çûka reben ma tepa me di mezinahîya fîl de çi ye, em çi dikarin.

Çûkê got: Bes min divêt hinek ji hewe digel min bên û em biçin bal kortaleke niziki fîl ve û hon di wê kortalê de bixwînin û bikin qurqur. Ji lewre gava fîl dengê hewe seh bike ê bawar bike ko ev dengê he ji erdeke biav têt. Dê bêguman bibe û ji êşa xwe dê bê bikeve tê de.

Beq pê qail bûn, çûn, li çalê de êwirîn û tê de xwendin. Fîl dengê wan bihîst û tibnê lê zor kir, berê xwe da wî dengî û qestê kir. Giha ser lêva çalê da ko avê vexut, hew dît ket û hilweşa tê de. Vêre vêre çûkê fir da û danî ser serê wî û her du çengên xwe liser hejandin û gazî kir ê:

—Hey heywanê gunehkar, yê ko bi xurtî û zexmî, û hinermendiya xwe xira yî, ser paça xwe çûyî û ji rê derketî û tu hesab ji min nekirî, niho te çawan dîbînî û dihesibînî ko min tu bi vê tep û hinermendiya xwe û digel vî cendekê hûr kuştî û êxistî vê çala kûr de.

Tu deng ji fîl ne hat ser hev de tepisi, welê mir û çû.

M. E. BOTÎ

# NAME

## BO LAWANÎ KURD LE IRAQA

Ey lawan! le demêke we Hawar der ne eçû. We le pêştiriş da hawar ne dihate Iraq. Çûnkî hikûmetî iraq hatinî hawarî bo Iraq bend kirdi bû. Beheq û naheq bê, êsta ême gö nadeynê. Ewey ke emro ême le şwênî egereyn lew gelê mihimtir e.

Bo çî lawanî Iraq wekû pêşû meqale û şiir bo hawar nanûsin. Belê lew roje we ke hikûmetî Iraq çûnî hawarî bo Iraq bend kirduwe lawanî Iraqiş destî xoyan lê kêşawetewe. Ebuwaya wa ne buwaya.Ihtimal e ke hawar be dilî xelik, be dilî bêganekan ne bêt. Belam be dilî xoman we hawilatî xoman e. Leber ewe ême derman hêna. We emroş derî ehênin. Û Xwe hez bike axiriş derî ehênin û heta dest birwa be naw hemû kurdana bilawî ekeynewe. Wekû êwe dizanin ewelemin hedefî hawar pêkhanin, rêkxistin û pêşxistinî zmanî kurdî ye.

Hawar wekû dêberêk e. Lem dêbere de debê hemû terhe towêkî pêwe bikirê. Towî esasî em dêbere duwan e. Leheeyî bakur (şimal) , leheeyî nivro (cenûb) yanî kurdî wilatî jorû û kurdî wilatî xwarû we.

Heta (15—16) jmarey, hawar be her dû kurdî derdeçû. Belam le paşa kurdî Sûran yanî Baba-Kurdî xoy kem kird. Çûnkî wekû le pêşe we witman hawar ître ne eçuwe Iraq. Êwe nûsrawî xotan le hawara ne edî, we berî koşeşî xotan ne exward. Belam ey lawan baş bizanin em rewiştî êwe ye rast niye. Ewelcar berî koşişî ême bo ême niye. Ewa bo neweyî paşeroj e. Îşî ême tow be zewîye we çandin e. Eme ke ême pê elên tow denike, be ser zewî da bilaw ekrêtewe, we be gasin exrête bin zewîye we. Le paş ewe le ême we diyar niye, heta sewz ebêt. Nûsarî êweş her wa ye. Ême ewe le ser rûperey hawara derêjin. Reng e sewzî ew bibinin, we rengîş e ney binin. Nabê êwe le ber eme dilteng bibin we le dilî xotana bilên: «Nûsrawêk ke min le şeklî çap da nabînim boçî û bo kê binûsim?» Êwe ewe bo yekyetî zmanî kurdî û bo neweyî paşeroj b nûsin.

Ey lawan wekû eşîret le wextî hawar da pelamarî tifingî xo didin êweş herwiha pirî qelemî xotan bidin we des be îşî xotan bikin.

Kurd û kurdayetî tenha be koşeşî êwe, be koşeşî lawçak etwanê bijî.

Daxim bo ew mileteye ke lawî ew bo ew tênakoşin. Xwezgem bew mileteye ke lawî ew lê hoşyar in.

HAWAR

---

# XEYAMWARÎ

Şev e, tarî ye, l'me ava bû hîv
Ka ew zend û destên wek zêr û zîv

Ger perde rabe û derkeve roj
Dê jê re xwe vekin kaş û beroj

Trîj dîbin tîr her bi simta xwe
Roj kurt dibin em bi qedera xwe

Me ji biskên yarê ne girt davek
Me ber meqsedê ve n'avêt gavek

Barana hûr bêtirs e, xunav e
Bêpakî em diçin nav e

Hingî ewr bibore pey re têt tav
Li ser me hene lerzîn û pertav

Leylan ji dûr ve xuya ye, av e
Wek me nezan her bêdeng û nav e

Ji pêlên avê hiltên biqbiqok
Em nezan dibên ev in biriqok

Hoste bêbingeh danî ev diwar
Tama mirinê kirim birîndar

Govenda bûkan û stêrikan e
Hevîna wan jana tilîyan e

Tiştên li şûnwaran mayî hîç in
Hevalên keyfê bê şop û rêç in

MISTEFA EHMED BOTÎ

# LE BEAU DE LA STEPPE

— 1 —

O cœur! . . . . . . . .
La vie de mon cœur est avec toi, pousse [ton cheval en avant
Ce soir, ô moi, malheureuse
Que jamais sur la surface du monde
Tu ne descendes du cheval (1)
Tacheté rouge et blanc, bien entretenu (2)
La queue et la crinière teintes en rouge

— 2 —

Je ne fais aucune malédiction sur la taille [de l'aimé
Dans la steppe de Mardine, sur les collines [plates des kikan, terre démesurée
Puisse-t-il surgir pour le bien-aimé une attaque [pareille à l'attaque des chemmars (3)
Les cavaliers saklawi (4) se jettent sur l'aimé
Sur la terre démesurée, que les brebis [effleurent de leurs mamelles
Que l'arpent des fils des péres (5) coûte (une livre (6)
Que les lâches, des héros, soient distingués [par témoins
Que la main des jeunes gens ne puisse [plus tenir les brides
Que les pieds des fils des péres ne [tiennent plus dans les étriers (7)

— 3 —

Les témoins (de la bravoure) de l'aimé [sont nombreux
Il était le protecteur du convoi (8) et des [troupeaux
Le nom de la fuite, aimé! est interdit
Aimé, viens, nos foyers sont ici
Les sommets des piquets des tentes sont [proches, tu peux les apercevoir
Que les mouvements de ma poitrine et de [mes seins, gazelle
Aprés la tombée de la nuit soient donnés (9) [à l'être bien-aimé
Au cavalier du cheval saklawî

— 4 —

Ce soir, que la vie de mon cœur soit [avec lui
Des vents, que ne vienne pas vers nous
Le vent de l'ouest, parure du visage du monde
Je fais attention, je constate, les chefs des kikan
Se sont retirés dans la chambre du pére [de Bichar (10)
C'est le conseil et les délibérations pour [le jour de chargement

— 5 —

Ce soir, le sommeil de l'être-aimé (11) ne [vient pas entre mes bras
Je ne sais si l'aimé a été pris par le froid [ou par la chaleur
Je ne sais si l'aimé est malade
Je ne sais si la saklawi a meurtri (12) ses cuisses
Je ne sais si les campements de mon pére [ont vieilli, si les puces sont tombés (13)

— 6 —

Ce soir, bien-aimé, que parmi les collines, [ce soit pour moi, la colline de kawkab (14)
Je m'achemine dans les rangs, les charges [et les troupeaux des kikan
L'être que j'aime, sur les chameaux dans [une chambrette (15)
Jai regardé la taille fine comme celle d'une ju-[ment saklawi, des saklawi du pére de Bichar
Devant la tente du pére de Bichar, sans licou

— 7 —

Ce soir . . . , . .
La chasse des garçons des belles n'était que [les oiselets des alentours des maisons
La chasse de l'être aimé est la première gazelle [du devant du troupeau
Ce soir, aimé leve toi, mets ta main dans [ma main
Enlevons nous l'un l'autre, allons au bord [du Khabour (16) des Begara (17)
Que la crête de Maghergan (18) serve de [couverture pour l'être aimé et pour moi

— 8 —

Ce soir . . . . . . .

(1) C'est à dire, il faut que tu ne quittes jamais la selle.

(2) L'expression (qesirandin) s'applique au lavage et au blanchissage des tissus, noircis par l'effet de différents procédés. Par ce mot on fait allusion à la propreté du cheval.

(3) Tribu arabe d'origine hédjazienne. Jadis en perpetuelle lutte avec les kurdes de la plaine de Mardine, à différentes reprises en guerre avec le fameux Ibrahim pacha, finalement battue auprès de Nissibine. Cette lutte contre un ennemi commun a servi à la reconciliation des tribus kurdes de la plaine qui se battaient entre elles.

(4) Race de cheval noble.

(5) C'est à dire les braves.

(6) C'est à dire que la lutte soit si acharné, que les guerriers disputent le terrain avec une telle bravoure qu'un arpent de terre coûte une livre or.

(7) Toujours la définition d'une guerre acharnée.

(8) C'est à dire « chargament du materiel, transport » d'où le mot « koçer » celui qui se transporte, non-sédentaire.

(9) Littéralement « non-prohibé, permis »

(10) Rechid bey, chef des kikan, qui guerroya pendant de longues années dans la plaine de Mardine. Rival du fameux Ibrahim pacha, chef des milan. D'ailleurs il est question de lui dans la biographie du chansonnier.

(11) Littéralement du « joli monde »

(12) Mot à mot « a frappé »

(13) En cas de victoire le campement avance, change de place et se renouvelle, sinon il est toujours dans la même place.

(14) Hauteur aux environs de Hassetche, fréquémment citée dans les chansons de la plaine, de même que les monts Abdul-Aziz et Sindjar. Ils servaient de lieu de campement et d'embuscade.

(15) Petite chambrette montée sur le dos des chameaux et reservées aux femmes et aux enfants.

(16) Rivère de la Haute - Djézireh, prenant sa source à Serê-Kanî. Cette rivière près de Deir-Zor se jette dans l'Euphrate.

(17) Nom de tribu arabe.

(18) Crête de la contrée.

Je suis descendu dans la steppe de Mardine
[ô moi malheureuse, la steppe de jadis
Là fleurissaient ce matin la fleur de margueritte
[les racines de moutarde
L'année passée j'étais la fiancée de l'être cher
Cette année je suis tombée bans le filet
[d'un misérable
Le jour de chargement je reste à l'endroit
[des campements
Le bois du berceau m'est devenu un fardeau
Le kitan (19) hideux, pour moi malheureuse
[est devenu une aile d'aigle

— 9 —

Ce soir . . . . . . . .
Lance (ton cheval) lance route-lointaine,
[lance fatigué, lance, ô que je t'admire
Ne demeures pas dans la chaleur de l'été, ce
[matin tu seras pris par le froid, par la chaleur
Tu auras mal à la tête, tu tomberas malade
Dans le pays étranger, tu serais à ma charge

— 10 —

O cœur . . . . . . . .
Ce soir le Tchakhirbazar (20) brûlé
Je ne l'ai pas vu de mes yeux, par ouï-dire,
[il est loin de moi
Ma poitrine et mes seins, ô moi malheureuse
Ce matin comme un jardin, parmi les
[jardins de Nissibine
Comme une prairie, de celles de Tilkerm
Comme un îlot, des îlots des alentours
[de Khabour
Que la vie de mon coeur soit avec lui
Viens, bien-aimé, au pélérinage de ma poitrine
[et de mes seins, ô moi malheureuse
Pose ta tête et dors
Cette étoile qui est venue sur nous, c'est
[l'étoile Karwanqiran
Pose ta tête et dors, l'étoile du matin
(est loin de nous

— 11 —

Va, va, ô cœur . . . . . . .
Aimé, si tu me délaisse, je ne te délaisse pas
Lo! lo! ô triste, trop de douleur,
(souffrance-profonde
Lance (ton cheval), ô chemin-lointain
Aujourd'hui, privé depuis deux jours de ma
(poitrine et de mes seins, ô malheureuse
Oh! si j'avais pu voir l'aimé
Comme dans les anciens temps, avec le groupe
(des cavaliers du pére de Bichar
Dans la plaine de Mardine, sur le dos
(du Ĥemdanî (21)
Ce matin dans l'îlot des alentours de Khabour

— 12 —

Ce soir la vie de mon coeur avec (lui)
Ce matin, le chevreau avec la chèvre, paissent
(sur le cap du mont de Sindjar
Les vêtements de l'aimé ont besoin d'être lavés
Je prendrai une pièce du savon d'Alep
Je les laverai dans l'eau de Zirgan (22)
Je les laverai, je les arroserai avec de
(l'eau parfumée, je les étalerai sur
(les arbres des giroflées

—13—

Ce soir . . . . . . . .
Nous avons un vieillard de la maison de nos
(péres (23) à la clémence de Dieu, le
(jour de chargement et de la mort
Nous avons trois frères, tous sous les crosses
(des armes, au jour du combat et de la melée
Quand mes yeux ne verront plus la
(silouhette de l'aimé
Je me dirigerai, j'irai à Midyat
Je donnerai le pan de ma robe, chez maître
(Melko (24) pour le faire teindre en noir

—14—

O cœur! . . . . . . .
Ce matin mon bien-aimé est parti pour
(le pays étranger
Il n'y a personne à la maison que je puisse
(consoler mon cœur
Les chagrins de mon cœur sont nombreux, les
(nuits des kanûns, ce sont des nuits longues
Que je me leve, pour mettre le garçon
(dans le berçeau
Pour consoler les douleurs de mon coeur,
(que je lui chante des berceuses
Que je verse des larmes de sang sur les trois
(boucles blondes, sur mes joues
Lance (ton cheval) la vie de mon cœur avec

—15—

O cœur! . . . . . . . .
Leve toi, tournons nous vers le pays
(du Kurdistan
Allons vers la malheureus Diarbekr, fosse
(des misérables
J'irai, ce matin, je leverai une pierre de la
(muraille de la prison des sanglants (25)
Je mettrai cette pierre entre mon coeur et moi
Dans le pays étranger je consolerai mon
(cœur avec elle
Lance, la vie de mon cœur avec, toujours lo!

(19) Espèce de châle, porté seulement par les femmes mariées.
(20) Village en ruine de la contrée.
(21) Race de cheval noble.
(22) Petite rivière, prend sa source dans les montagnes de Ghource et se jette dans le Khabour.
(23) Veut dire: qui est transmis par nos pères. Très vieux respecté par la maison.
(24) Nom propre, teinturier.
(25) Le mot «xwini» qui littéralement veut dire sanglant. signifie criminel, et dans un sens figuré équivaut à l'expatrié.

Lance, ô route-lointaine, ô plaine-douleur
—16—
Ce soir, parmi les crêtes, la crête de
(Guideche (27)
Mon bien-aimé monté sur un poulain ibe (27)
Il s'est dirigé vers le versant de la steppe
(du sud
Les pieds du poulain du bien-aimé se
(heurtent aux pierres
Je ne sais pas, le malheureux maréchal-
(ferrant l'a mal ferré
Mon corps brûle, mon cœur souffre avec lui
—17—
La fille disait: ô bien-aimé je ne suis pas
(une femme (libre) je suis avec un homme
Je suis la sœur de sept frères, qui sont
(comme des lions
Je suis la cousine de douze cousins, tous
(cavaliers des chevaux entiers
Lorsque mes yeux ne verront plus la silouhette
(du bien-aimé
J'irai au bas de Nissibine
Chacun des sept frères et des douze cousins
Sur la sommet de crête de Hamidiye, je
(les enterre tous
—18—
Ce soir . . . . . . .
O bien-aimé, à moi et à la vue de Tilkerm
Le beau de la maison, est monté, dans ce
(soleil, dans cette chaleur du soleil
Je ne me tourmente pas à cause du beau
(de la maison
Je me tourmente, parcequ'il ne porte que
(le pantalon blanc et la chemise de soie
Il est allé à la tête de la source, il va prendre
(ce froid, ce chaud et froid
—19—
O cœur . . . . . . . .
J'allais vers la porte, la porte ne s'ouvrait
(pas à moi
Je suis monté sur le haut de la maison, il
(n'y avait pas de chemin (28)
Je suis descendu du coté de la cour j'ai
(fait attention
Ma bien-aimée (29) sous la fenêtre
La brise du vent de l'est était venue
Elle m'alourdissait les yeux
Je ne me suis pas éveillé de moi même
Je suis allé au pélérinage de la poitrine
(et des seins
Ils étaient enfermés avec cadenas et clef

Ehmed Ferman (30) je ne sais si s'était
(mon augure
Ce matin, si s'était ta chance
—20—
Va, lo! lo! . . .
Ce soir, ô mon Dieu, je ne te demandes rien
Qu'une tente à quatre piquets, une cloison
(des Chikak (31)
Un marteau du bois de benav
Puissé-je dresser la tente de l'aimé
Dans la steppe de Mardine, sur la crête
(de Serê-Kani
Dans l'ilot de Evdiselam
—21—
O gazelle! . . . . . .
Ce soir, tu es ma gazelle, tu es la gazelle
(du bas de la steppe
La bouche à la pature, l'œil sur le gazelon,
(l'oreille aux aguets
—22—
Ce matin, que Dieu accomplisse mon vœu
(et celui du bien-aimé
Dans la steppe de Mardine, aux mois de
(Juillet et d'Août
Je jeûnerai jeûne sur jeûne
Ah! si je devenais une lance de douze pouces
Et que je tombe aux bras du bien-aimé, du
(cavalier du hamdani
—23—
Ce soir, la fille disait: mon cœur est comme
(du sable de l'Euphrate
Kosara-Kikan (32), Amouda (33) brillante,
(colonne de la patrie
Je n'abandonne pas la taille fine jusqu'à ce
(que ma tête aille
A Diyarbekr, devant l'échafaud du bourreau
—24—
O cœur! . . . . . . ,
O aimé jusqu'au moment de la mort
Jusqu'aux jours de la tuerie et de la melée
(toujours lo! lo!
Ce matin, ma crainte est de cette crainte,
(je mourrai dans le pays étranger
Avant de vieillir, et je n'aurai pas dit
(suffisamment ô aimé lo! lo!

DELALÊ-BERÎYÊ ET CHMED-FERMAN

DELALÊ-BERÎYÊ —Dalalê Berîyê mot à mot signifie le beau de la steppe, ou de la plaine.

Le «Delal» chant populaire lyrique et héroïque, est trés répandu dans le Kurdistan

(26) Crête de la plaine de Mardine.
(27) Race de cheval noble.
(28) Les toits des maisos de villages kurdes, sont en terrasse.
(29) C'est le garçon qui parle.

(30) C'est le nom du chansonnier. D'aileurs c'est la coutume des chanssnniers dans de pareils cas de citer leurs noms.
(31) Tribu kurde du Kurdistan du nord.
(32) Nom propre de localité.
(33) Petite ville, actuellement en Syrie.

12

# ZOZANÊN BÊLÎ

—Ji Welato ra—

Gelek bilind û pir av
Gava sibê dide tav
Di panzdehê Gulanê
Heya Çemê-di-Kanê
Gişk rêl û debl û zevî
Lê digerin pezkovî
Di bin hêlê de Salik
Gundikekî pir kiçik
Kesera dil Diharan
Ew ava wek robaran
Keçelek gişk dar û sî
Ka gopalên çivilbî
Hele warên Çirikê
Keskayî tê qirikê
Ji Qezêz û Tixinkêr
Li wî erdê axbizêr
Heyhey dikir şivanan
Weheweha gavanan
Çûçik, şalûr û bilbil
Ew loriyên piştbicil
Gava ko zom radibûn
Mirî li wir radibûn

Tev şihar û zinar in
Çima wer xweş diyar in
Carê çû bûm serê zût
Golberan û Qeretût
Tev de kesk û hişin e
Şag û newal, kani ne
Hember malan zimag e
Mešelê wî devşag e
Çi wareki bihuştî
Canê mirov divejîn
Dûdirêj û Sêvdinan
Gori we bin xeziran
Tevi nivîşk û lovmast
Kêfa dilê min dixwest
Heya Gola-Zêriyan
Dihat dengên bêriyan
Bi xiroşme û bilûr
Borina canegên stûr
Dikin şayi û sazan
Li ser dikin perwazan
Dinê dibû şahinet
Ew bû cihê tebiet

LAWÛT

go: ez çavê te me, tiştê te xwest mi ji te re ani.

Wextê çav li teyrê tawûs kir, jinkê fehm kir bê kuştina yarê wê ev teyr nayê. Madeki zer i pis bi jnikê de hat. Ya Ehmedê Zaydan li xwe çetin megire ti ji mi ne meztir î. Mi serê yarê wê ji paşila xwe derxist û mi li ber danî. Rih-ji jinkê çû. Mi goti-yê; Çima madê te qulibt û ti bêkêf bûyi, hey qelbê

– Gote mi, ez di bextê te de me

Mi go, bext ji te re nine. Mi deri lê girt mi şûr kişand û lêxist, mi kuşt. Dê Eĥmedê Zeydan ez dibinim ti geleki diqehirî, ev tişt timam jina te bi serê te kir.

Ya mirê mi, bi eniya mir ewê di rex kurê cina de ser text rûniştî, heta niha ez dibêm eyn ti bûyi. Kurê mirê cina go;

-- Eĥmedê Zeyden, te divê ti herî mal

Mi go, herê mi divê ez herime mal. Emr kir ser di xortan, rahişte çeplê mi û ez avêtim pişt xaniyê mi. Xanik di pişt xaniyê mi de bû û qulekek devê wê di xênî de bû. Ez li wî xaniyî rûniştim û di wî deriyî ve li hindirû dimeyizand. Jina mi wî xwe xemilandiye, çavê xwe kil kirme û li hindirû dikevê û dirabê. Mi di carekê xortek ji der de hate hindirû, ez wî eyn nas dikim, filankes kurê filankes. Wî û jina mi destê xwe di stikura hev re anîn û rûyê hev maç kirin. Jinkê doşek danî, jê re balgi û zenberiş, jê re danîn, qazek jê re anî, wî bi destê xwe gurand, jinkê hûr hûr kir, li êgir kir û birineek ji çêkir, ĥeta kelin. Jinik rabû kire mesrefê de, goştê qazê li ser danî, kire bin tiştê de. Wî destê xwe avête jinkê, kişande ser doşekê, dê wêca vê işê pê bikê û nûka xwarina xwe bixwê. Pa ez bi çavê xwe dibinim hedana mi nema dihat. Mi deri vekir û ez ketime ser. Mi go: ez filanê filankes, ez Ehmedê Zeydan mi digo ez mirî bim kes nikarê pê li tirba mi bikê, iro ti pê li namûsa mi diki.

Wina li mi vegerand: ti zirta zêdeyi xwe meke, heke ti mêrekî mêrxas i, çekê bi xwe re deyne, ez û ti emê bi efra rahijne hev û heke ti nedeyni çeka bihêle ez ji çekê xwe êtim û emê rajne hev, ti biçek, ez bêçek ti fixra te nine.

Wextê wilo go, mi çek avêtin, me rahişte hev, wina nav di jina mi da. Jinkê rahiste lingê mi û ez di bin de dam erdê, gote jinkê:

Şûrê wî werine da em serê wî jêkin

Destê wê ne giha şûr, beroş kire bin piyê xwe, şûr bênê xwar. Ez di bin de mam keftelefte dikim. Hingî rih şêrin e, gidêmiya mi di bin taziyê mi de ye. Carekê destê mi lêket, mi gidêmi kişand û mi avête ûrê wî. Roviyê wî mi bi ser xwe de anîne xwar. Mi lingê xwe da singa wî û mi çend kire dera ha. Jinik hê li şûr dixebitê da şûr bênê xwar, da serê mi pê jêkin. Wextê halo meyizand, mi mêrik kuşt, go:

– Ya Eĥmedê Zeydan, ez dexila Xwedê û te, mi kir ti meke.

Mi go: ma ti xwe ki kû da?

Mi da her ekfiya ĥeta mi hûr hûr kir. Laşê wê û ê mêrik tevda mi kire xirareki mûwi da û bi şeriteki peve şidandin. Mi erd kola, her di kirinê da. Mirê mi ev bû selfa mi.

Mîr go, b'eniya mi serê mi bi selfa te raĥet bû. Kuro rabin enteriki werinin, li Ehmedê Zeydan kin. Ya Eĥmedê Zeydan wê rojê li ser text, di rex kurê mirê cina de rûnişti ez bi xwe bûm û b'eniya mir go ne ji mi bana wê rojê te bikirana piçk û pari.

Mîr jî, zavayê mirê cina, Mirê Bota' Miĥemed Begê nêçirvan bû.

★★★

Ev çiroka ha ji min re mixtarê Tilşeira-Aşitan, ĥeci Ĥemze kurê ĥeci Silêman gotiye. Min tu tiştê wî ne guhart û herweki ji devê ĥeci derketiye welê ji guhastiye Hawarê. Zarê wê gelek nizingi zarê Hevrkan e. Di Hawarê de gelek nivisar bi zarê Hevêrkan belav bûne. Xwendevanên ko bi zman mijûl dibin heke ev û nivisarên din dane ber hev, ewê xwe bi xwe dikarin vê nizingahiyê têderinin.

Di çirokê de tête gotin ko Miĥemed Begê nêçirvan, mirê Botan, zavayê cinan bû. Me di hejmara Hawarê a bist û pêncan de biserhatiya Miĥemed begi digel keçperiyê, bi hêneeta şibra «Bêriya-Botan», goti bû.

*Korto! Te jî dîroka miletê xwe karek li ser xwe girtiye. Ew karekî giran e. Ji xwe karên giran para mêran, para mêran karên giran in. Te ew kiriye pişta xwe û daye kaşê çiyayên ko bireve bilindtir û asêtir dibin.*

*Herçend bibdikişî û ji destê dûr dikevî, diwestî, lê ewçend zexm û xurt dibî.*

*Hawir diguhêre, lîstinen nenas dibînî.*

---

# ÇARÎNÊN XEYAM

Wê şeraba yaqûtî û rengsor bîne
Wî heval û destbrayê azayan werîne
Tu dizanî ko heyîn ji axê çêbûye
Bayek e, tîj dibore, şerabê bîne.

Dizanî spêdeyê de dîkê sibehî
Çire hinde dîke hawar û gazî ?
Neynika sibehê de nîşa te dikin
Ko ji jiyîna te şevek borî û tu pê nizanî.

Min falek ji deftera hevînê vekir
Ji nişkekê ve pisporekî bi dilgermî got :
Bextiyar e, ew zelamê ko mala wî de
Delala wî heye, heyvrû, û şeva wî heye, drêj
wek salê.

Berî ko navê te ji dinyayê biçe
Vexwe şerabê xema te dê biçe
Keziyên delalekê ji hev bike
Berî ko lasê te ji hev bikeve.

Sernijdevanê rindên xerabat ez im
Ji gotinên bê cih gunehkarbûyî ez im
Yê, ji vexwarina meya zelal bêxewmayî
Û bi xwîna kezebê lavelavkirî ez im.

Xwe bigire ji giyanî tê dûr bikevî
Li pişt perdeyê veşartiyên Xwedê kûr bikevî
Şerabê vexwe tu nizanî, hatiyî kû
Dilxweş be, tu nizanî dê biçî kû ?

Şerabê vedixum lê serxweşiyê nakim
Ji bilî piyanê desdrêjiyê nakim
Dizanî qesda min ji şerabperestiyê çi ye?
Da ko wek te xweperestiyê nekim

Dinê dîtî û herçî dîtî hîç e
Û her tiştê ko gotî û bihîstî hîç e
Heke dinê seranser geriyayî
An ji goşeya malê de runiştiyî hîç e

Gulê got rûyekî ji rûyê min spehîtir nîne
Hevqas westabûna gulavgirî ji bo çi ye
Bilbil bi zmanê halê xwe got
Ma ji bo kenîna rojekê kî salekê negirî.

Roja ko hespê ezmanî tê de zîn kirin
Û Mişterî û Perwîn rewşa wî kirin
Ji dîwana qezayê nesîbê me ev bû
Ma gunehê me çi ye, kismetê me ev kirin.

# KOÇERA MÎRAN !...

Ho koçera min! Min bi maça devê xwe maç bike. Hevîna te ji şerabê spehîtir e. Bihna te bihneke şirîn e. Dengê navê te wek roniya rojê belav bûye, ji lewre herkes hej te, hej sura bayê te dike.

Ho keça koçerê mîran! Tu esmer î, lê spehî yî. Tavê li rûyê te neyiriye, ji lewre tu esmer î. «Zêrê zer î xirab nabî, tu koçer î deştî nabî.»

Di nav kulîlkên sor û zer de kulîlka spehîtir tu î. Di nav jinên ziravû şirîn û bi hejn û bal de a çelengtir tu î.

Di spehîtiyê de serdara serdaran û sertaca delalan tu î.

Singê te ezmanê min e,mirarî ser singê te de wek stêrkan diçirisin. Çavên te ne çavên xezal û askan in. Di çavên te de agir

# JI MELÊ

Di Kurdistanê de mela zehf bûn. Xwedê kêmaniya wan medit, îro jî ne hindik in. Lê gava bi tenê «Mela» tête gotin herkes pê dizane ko ew mela «Malayê-Cizerî» ye. Qesta me ji ew melayê biagir e ko di bin wî de kuç disincirin û jinan nanên xwe pêve didan.

Diwana melê, nemaze bi felsefe û tesewifa xwe bêja ye. Lê ewçend ji jî pirsên biyanî teji ye. Me dil kir em çend malikên diwana wî, ji bona ceribandinê, bi herfên me ên nû û xweser binivisînin. Ev in, du xezelên wî :

## XANIM :

Pir ji dina te šerib im xanim
Ji te ser ta bi qidem heyran im
Her bi can teşneleb û le'lan im
Dil di benda giriba zilfan im
Yûsifê cirhekeşê hicran im
Niqtei daîrei rindan im
Lew şebi daire sergirdan im
Badenûşê qedehi hirman im
Bi dil ateş ji ceger biryan im
Lew perişan im û pir êşan im
Aşiqê nazik û mehbûban im
Tu mehê bê ser û saman im
Gulê baxê iremê Buhtan im
Şebçiraxê şevê Kurdistan im
Çi tebiet beşer û insan im
Lilahilhemd çi alişan im
Di rêya yarê de li rêza san im
Lew di eqlîmi suxen xaqan im
Sibehê id e, û ez pê zanim
Go bi kêra te seher qurban im
Xweş birîndareki bê darman im
Carekê şefqe ke rûh im, can im
Ji Xwedê re veke benda biriyê
Dinbirê hûri-misalê zeriyê
Nazikê neyşekirê surperiyê.

## DIL JI MIN BIR :

Şûx û şengê zuhrerengê dil ji min bir dil ji min
Awirê heybetpilingê dil ji min bir, dil ji min
Wê şepalê miskixalê dêndurê gerdenşemalê
Cibheta biskan sema lê dil ji min bir, dil ji min
Zilf û xalan nûn û dalan wan ji min dil bir bi nalan
Goşeyên qewsên hilalan dil ji min bir dil ji min
Dêmnedîrê boebirê xemri û keysû herîrê
Sîne kir armanei tîrê dil ji min bir dil ji min
Surşirînê nazeninê kuştime nakil yeqinê
Wê bi çengala evinê dil ji min bir dil ji min
Fetl û taban da šuraban ebleq û euhtê şibaban
Damç ber pene û gulavan dil ji min bir dil ji min
Xweş-xeramê ez šulamê nazikê şêrinkelamê
Suhtiya eywanmeqamê dil ji min bir, dil ji min
Maberûyê miskeboyê sur-pilingê şêrexoyê
Wê bi zilfa şibhi goyê dil ji min bir dil ji min
Her du çeşman nàz û xeşman kê ji ber wan
|eql û hes man
Saheta min di bi çeşman, dil ji min bir, dil ji min
Mahitabê, alitabê, dêm ji rojê şevniqabê
Xweş bi çengal û kulavê dil ji min bir, dil ji min
Serwinazê serfirazê şibhi zêr remza mecazê
Dame ber çakûç û gazê dil ji min bir, dil ji min
Bejn û bala tox û lala min kirin vêk ra mitala
Çiçeka terhin û ala dil ji min bir, dil ji min
Mirê šazi şêrê tazi vêgeran min di bi bazi
Kir li me ji šeflet ve šazi, dil ji min bir dil ji min
Şîr û xiştin zilf û qiştin hin veşartin hin vehiştin
Pehlewanan dest vemiştin, dil ji min bir dil ji min
Ruhniya çehvên mela yi ew tecelaya te dayê
Ya ji Ehmed dilrevayê, dil ji min bir, dil ji min.

---

hildibe û kortalên kûr û tari lê hene.

Zêndana dilê min çavên te ên res in. Hêlina hevina min di siha mijangên te de ye.

Koçera min, ji xewê rabe koçera min. Buhara pêşin e; mêrg û solin bi bihn û reng in, ba serxweş e, kanî sar û bi kêf û guşguş in; hezar strana hevinê dixwine.

Libadeyê te ziv e, bedena te servehati ye. Di zendên te de bazinên zêr û gewherkiri, di baskên te de bazbazingên sor û zivkiri bêlileya rewşê distirin.

Bisk û guliyên te ên çinçinkiri bihna misk û enberê belav dikin û ser dilê xortan vedidin.

Hewa bi bihna te bihndar, çiçek bi rengê te rengdar dibin.

Wek tawûsê lûleper û nazdar i, meşa te wek meşa qumri û kevokan nerm û sivik e.

Ho koçera min! Serê te nevserk û kumribkiri, tiliyên te gustilkiri, gustilkên te sefkiri, eniya te loq-kiri, nermikên te guharkiri, gerdena te morikiri, zendên te bazinkiri, lingên te xilxalkiri, bedena te biskojkiri, şara serê te gulivk û serçaxkiri, keziyên te şerabkiri, ristika te serdilkiri ne, ho koçera min! Çavên xwe veke ez dixwazim stêra qedera xwe bibinim.

Lêvên te sor in, û wek agiri germ in. Gul bi kenina te dibişkive û bi girina te diwerihe.

Koçera min, rabe û min bi maça xwe maç bike.

Dilê min serxweşiya maça te û mestiya bihna te dixwaze. Berde, bila zenda min bibe kemberbestiya nêvlenga te, Dev û lêvên te kaniya ramûsanê ye, bilo!e bila bêriya dilê min, bi ava wê kaniyê din û bêhiş bikeve! ! ! Ho koçera min.

Dr. K. A. BEDIR-XAN

# ZERDEŞT Û RÊYA ZERDEŞT

«...our dear and valiant brethren, the kurds, the only heroic people who have perserved the purity, integrity and independence of the old Iranien race.» The Editor of The Iran League. Bombay. Vol. VI. no 1. October. 1933. Page 31.

Dinê winda, ber cavên cihan Xwedê ne bû
Bi hawara hişê te erd û ezman rabû.
Te got ji bo herkesî yek namûs û yek bext,
Çi piçûk, çi mezin, çi hakimê şûr û text.

Baweriya te rêya rast e, ditina pak,
Gumana rind, kirina baş û gotina çak.
Fermana te vejand jinê ji xewa tarî,
Roniya pêşin î, fexra miletên Arî



Zerdeşt ji me ye, û îro ji di Kurdistanê de hin kurd hene ko pê bawer in. Ew ji Eyzedî ne.

Ji ber ko zanayê kurdistanê ê berê Zerdeşt bû, ji bo me zanîna binyan û qeydeyên rêya Zerdeşt çak e. Ji vê zanînê medeniyeta me a kevn, bilindî û kûrahiya hişê me, dilpakiya MILETÊ KURD xuya dibe.

Ji xwe felsefe û nivisandin ango destpêka pêşketina cihanê bi heyîna nijadê me ve girêdayî ye. Cihandostî, cihanbratî ji destxetê me ye.

Navê kitêba zerdeştiyan Avesta ye. Nivisevanê wê Zerdeşt e. Dema nivisandina Avestayê bi ewleyî hêj ne haliye zanîn. Hin nivisevanên rojavayê dibêjin ko şeşsed sal berî Isa pêxember haliye nivisandin. Hinekên din û zerdeştî bi xwe bawer in ko Avesta pênchezar sal berî Isa pêxember hebû. Herhal

kitêbeke gelek kevn, mezin û hêja ye.

Berî Zerdeşt û Avestayê mirovan yekîtiya Xwedê ne dizanin. Baweriya wan tari, bê bim û bê binyan bû.

Tiştên ecêb wek heywan, ba, av, dar, çiya ji xwe re dikirin Xwedê, hej wan dikirin, ji wan ditirsiyan û ji wan re lavelav û perestiş dikirin. Yekîtiya Yezdan, mezinahiya wî bi Avesta hatiye belav kirin. Rastîya hiş û dil, pakîtiya laş û inal û cil bi fermanên Zerdeşt bûn qeydeyên jinê û armancên miletên pêşketî. Gotina dînê Zerdeşt a paşîn ev e: dinyayê de rêyek heye, ew jî rêya rastîyê ye. Ma şairê Kurdan ê mezin Xanî jî ne digot:

Kizb û xilaf mebêj ger te bikin ker bi ker.

Ji bilî vî mamikê me ê delal: Derew dijminê Xwedê ye; çiqas ronak û servehatî ye.

HÎMÊ BAWERIYÊ

Zerdeştî divê baweriyê binin ko: Xwedê yek e, bê hewrî ye, bê deng e. Abadîn e, zana û xurt e. Her hebû, her heye û her dê hebe. Ji afirandiyên xwê re mihrivan e, qencî û xweşiya wan dixwaze.

Xwedê bi çavên me naye ditin, lê dinê ji serî heya binî şahidê heyina wî ye. Ezman, roj û heyv, stêr, giya, av û heywan bi golinekê her tişt heyîna Xwedê û mezinahiya wî nîşa me didin.

Ev tiştên ha hemî bin qanonên afirandinê de hatine saz kirin. Qanonên afirandinê abadin in, nayin guhartin, nayin edilandin, çawan hatine afirandin wisan diminin, ser xwe disekinin. Xwediyê qanonên jorin, şehinşahê wan, afêrideyê wan Yezdan e.

Xwedê zana ye, ji kirin û fikirin û ji golinên me xweyhay e. Kes nikare jê tişteki veşêre, naye xapandin, yên qo bawer dikin Xwedê dixapînin tinê nefsa xwe dixapinin û tewza hişên xwe dikin.

ARMANCA VÊ ZANÎNÊ

Zanînên hîmên baweriyê, me ditîne niziki veşartiyên daxwazên Xwedê. Bi vî awayî em dizanin vên û fermanên Yezdan çi ne û em çawan dikarin xwe bigehînin wî.

MAYÎYÊN VÊ ZANÎNÊ:

Ji vê zanînê xuya dibe ko başî û piyariya Xwedê bi zelamên qenc re ye. Dinê û jin destên me de wek mehfûrekê ye. Xweşî, çelengî, reng û awayê mehfûrê herweki destên xebatkerên xwe de ne wisa jî, spehîtî, bextiyarî, siûd û çaki û neçakiya jinê û paşiya me di destê me de ne. Herwekî Xwedê piyar, mezin û neqenciya afirandiyên xwe naxwaze, ji qehr û belayên jinê tinê em mesûl in. Kirêtî, jarî, ketin û şerpezeyî destkuta me ne.

Ev fêkiyên jehrîn karê tiralî, bêbextî û belengaziya dilên me ne. Yên ko hej Zerdeştî dikin divê hej ronahiyê bikin. Fikirîn, kirin û golinên wan divê wek ronahiya rojê pak, rast û qenc bibin. Tinê zelamên bêbext xwe wedişêrin.

Yên ko kirinên xwe vedişêrin, û ji bo veşartina wan dikevin pê tariyê ne mêr û ne jî camêr in. Di nav beyna rastî û nerastî, spehîtî û kirêtî, ronahî u tarîtî, qencî û xirabîyê de şerekî mezin heye.

Em bi çavên xwe dibînin ko nerastî, kirêtî, tarîtî, xirabî hero sistir dibin. Ketin û xirabûna wan fermana Yezdan û armanca mêrên camêr in. Ji kirinên qenc can û dilê me şa dibe, ji kirinên nexweş tirs û êş dikeve dilê me, jîna me dibe bê tam û bê xurtî. Ev hesandina dilî, ev kêfxweşî û dilêş têsîra ronahiya Xwedê ye. Jin û mêr pê dihesin û jin û mêr rehmet û ezabên vê ronahî û tarîtiyê dizanin.

Ji xêzikên jorin dixwiye ko kurd, ji kerema Xwedê, her li ser rêya rastiyê de mane. Berê bi Zerdeşt û niho bi dînê me ê delal û mezin misilmaniyê.

Dr. K. A. BEDIR-XAN

# LE SOLEIL NOIR

## Les Coutumes du Pays des Kurdes

Le plateau de Hewreman qui est situé au sud du Kurdistan entre Suleymaniyeh et Sine - la première, ville des gens d'un esprit rare et fin, la deuzième célèbre par la beauté de ses tapis et ses objets d'arts est une merveille de la nature.

Ce pays riche, fertile, doté d'un charme exceptionnel est par excellence le foyer des poètes et des artistes.

Pour ceux qui connaissent bien le kurdistan, seules les montagnes et le plateau de Milles-Lacs avec ses eaux de cent couleurs pétillantes, sa végétation vigoureuse et florissante, sa situation remarquable, sa richesse minière au nord du territoire oú, entourée de brumes rose se cache la source de la vie et du bonheur éternel; peuvent être comparées au plateau de Hewreman. En escaladant les montagnes de Hewreman on éprouve une sensation bizarre. On croit atteindre le ciel bleu et clair du pays, en suivant les pentes colorées et parfumées par des fleurs connues et inconnues qui grisent l'odorat et enchantent les yeux.

Mais le merveil de la nature s'accomplit à l'aurore, une heure et demie avant le lever du Soleil sur la terre d'Asie; des monts de Hewreman on le voit enfoncé dans le velours de la nuit comme un démon noir, dépassant de quatre à cinq fois sa grandeur.

Les Kurdes habitués à ce spectacle vous font suivre les mouvements et l'évolution grandiose de l'Astre.

La nuit regne encore et sous la voûte étoilée, silencieuse, la terre dort et donne l'impression d'un temple vide et chaque chose apparait nonchalante et mystérieuse.

Malgré les notions précises de la science on aime à croire que la terre se reposant dans la tranquilité immense de la nuit c'est le soleil qui avance.

L'Astre qui tout d'abord est absolument noir, petit-à-petit évolue et prend une couleur de sépia très foncée pour passer à une teinte mauve, lilas et ces différentes couleurs, par des changements très graduels, se fondent en un ton jaune vif.

Puis la coloration prend une allure plus précise, le jaune devient rose comme une flamme naissante, un rouge très vif lui succède pour faire place au globe d'un rouge ardent comme un énorme morceau de fer brûlant qui semble verser le feu dans l'espace.

Au loin, à l'horizon sur des collines éteincelantes on aperçoit des bandes d'oiseaux parcils à des essaims bourdonnates d'abeilles. La densité de la nuit s'affaiblit, des brumes passent, des ombres et des nuages s'enfuient, entre la terre et le ciel on voit se former un roud doré comm une ceinture magique: d'oú sortent des reflets rouges, bleus, gris, mauves, jaunes et blancs dans une limpidité qui laisse voir les étoiles.

Pendant une heure et demie, les yeux sont extasiés par ces jeux colorés et lumineux et se reposent en contemplant l'aurore qui nait dans la plaine. Comme une grande rose l'Astre s'épanouit dans le jardin du ciel et la terre pâlie, rit sous la lumière éblouissante dont les diverses couleurs teintent le frisson des eaux. Ce que je viens de peindre est une des mille beautés de ce pays. Mais il faut entrevoir les raisons de la vénération presque religieuse que les kurdes éprouvent pour la nature et leur culte de la lumière.

Mon séjour m'a permis de voir les coutumes intéressantes qui caractérisent la nation. Sans avoir la prétention de donner à ces lignes la porté d'une étude je veux raconter des choses vues les concernant.

Ainsi la fête de la naissance du printemps est un grand événement familial et social de ce pays, de cette race grave, libre, amoureuse, et forte. Le 21 Mars est considéré comme le premier jour de l'année. L'hiver, la nuit qui étaient tombés sur la vie passent et une clarté neuve comme l'eau limpide des sources jaillit des rochers, envahit la terre. Les belles heures s'approchent. Les arbres effeuillés s'habillent.

Le ruisseau qui pleurait tout un hiver sous les glaçons chante sur les sables à travers les buissons. Le froid n'est plus têtu, le soleil promène les fleurs dans les champs et les prairies. La neige des hautes montagnes se fond et comme le poète le chante des forteresses blanches, gigantesques tombent et s'écroulent. L'armée des roses, des tulipes, des narcisses envahit la terre doucement en la calinant. Les troupeaux chassés par la neige et refugiés dans les plaines prennent leur marche vers les montagnes et les plateaux.

Ceux que la neige avait fait descendre

commencent à monter. Des milliers de moutons et des chèvres s'élancent vers les hauts paturages. Un sang vif s'éveille dans les veines des hommes et des animaux. Les oiseaux chantent, les pâtres vivifient leurs flûtes et dans la fête de la montagne les échos des rêves enfuis inspirent les poètes.

Dans les villes et villages les maisons sont ornées. Les salons et les salles à manger sont fleuries de roses et dans de petites corbeilles et des vases plats les grains de blé ensemencés dans la terre mère, élancent leurs lourds épis. C'est le jour où chaque table a la grande abondance des mets et des douceurs.

Chez les Kurdes non mahométans, chez les Yezidis, les adeptes de l'ancienne réligion Kurde, le vin rouge coule. La jeunesse habillée élégamment rit, chante et danse. Tout le monde est gai. On oublit les rancunes, on s'embrasse et on pardonne. Et ce jour là, le moindre mot désagréable, le plus petit geste impoli sont considérés comme une offense à la divinité au même titre qu'un acte brutal et inexcusable.

Cette vieille coutume est très respectée. Le même jour on met dans des tasses vertes remplies d'eau des morceaux de papier sur lesquels sont écrits des vers célébrant les temples antiques, la lumière divine et on boit cette eau qui est considérée sacrée.

Il est bizarre de voir les Kurdes mahométans fêter avec tant de joie la naissance du printemps, vestige de leur ancienne réligion, tandis que les mêmes, surtout les nobles ferment leur cuisine pendant les deux grandes fêtes islamiques. Ils prétendent que festoyer pendant ces fêtes porte malheur.

Le proverbe turc qui dit le Kurde est musulman comparé à un incroyant «gavour» trouve peut-être sa signification dans des coutumes pareilles de cette nation.

Chez les Kurdes l'idée de la famille est très développée, la naissance d'un enfant est un événement d'une importance spéciale. Dans les villages, entre les tribus on fête publiquement pendant une période variant de 3 à 7 jours, la naissance de l'enfant.

La mère est comblée de cadeaux: montres, bracelets, bagues, jolis tapis, soieries multicolores. Le septième jour l'enfant reçoit son nom. Le prénom du père ne lui est pas donné: si celui ci est mort avant la naissance. L'appeler par le nom de son grand-père ou grande-mère paternels ou maternels est dans les coutumes. Le parrain est toujours un homme de bonne renommée, le plus recherché est celui qui a bu l'eau de sept mers, symbole du savoir et de sagesse. Quand l'enfant a 10 ans il est envoyé chez ses oncles.

Les frères et les sœurs recevant mutuellement leur neveu renforcent les liens familiaux. Et envoyer à la rencontre d'un voyageur ou d'un visiteur estimé le neveu au lieu du fils de la maison c'est l'honorer et le considérer.

La coutume musulmanne orientale qui consistait à ce que le mariage se fît par intermédiaire, sans que les futurs époux puissent se voir, a toujours été inconnu chez les kurdes. Les femmes kurdes n'ont jamais porté le voile; aussi l'amour avec toutes ses grâces et ses conseils charmants naissait souvent spotanément et grandissait en générale d'une manière bien sage.

La femme kurde n'apporte guère au foyer conjugal que sa gracieuse personne et son coeur chaud et dévoué, la dot est chose inconnue; le mari prend tous les frais à sa charge et bien souvent assure à son beau père une somme rondelette.

Plusieurs fils à marier peuvent amener dans une famille une véritable débacle financière. Heureusement en général les jeunes hommes très ardents et moins patients arrivent à se débrouiller eux mêmes pour obtenir la main de la bien-aimée. Après l'entente intime des deux jeunes gens, la mère ou la tante du jeune homme fait une démarche discrète chez les parents de la jeune fille. Si cette démarche est encouragée le père ou l'oncle fait la demande officielle.

Le soir du jour où le consentement est accordé dans une réunion intime on fête les fiançailles. Dès cet instant le fiancé a la permission tacite de voir sa fiancée chez elle. Les jeunes gens ne se gênent pas pour user et même abuser de cette autorisation et ceux qui arrivent à s'assurer la symathie de leur future belle mère peuvent bien se mettre à l'aise. La durée des fiançailles n'est pas fixée. En général elles ne dépassent pas une année. A partir de ce moment, des petits cadeaux offerts gentiment par le fiancé entourent la petite fille rêveuse.

Le jour heureux venu si les futurs époux

sont dans le même pays un cortège de piétons se forme, s'ils habitent des villes différentes c'est un cortège de cavaliers. La jeunesse se met en tête précédée par des enfants de dix à douze ans. La fiancée vient après ayant à ses côtés quatre jeunes femmes mariées suivies par les membres des deux familles et de leurs invités. Quand le cortège arrive à proximité de la maison nuptiale gai et chantant on entend des voix de femmes :

- Où est le gendre.. pourquoi n'est-il pas venu à la rencontre de sa fiancée?.. ah non.. dans ces conditions nous allons rentrer chez nous.. nous allons la conduire chez son père....

Les confidences des femmes agées m'ont appris qu'il n'était pas rare que des jeunes filles innocentes et crédules palissent d'inquiétude et passent des mauvais instants en pensant à la possibilité d'un retour triste vers la maison paternelle. Les murmures persistent et le gendre qui est là dans un coin, dans une rue à peine éclairée s'avance tout rouge, timide et balbutiant des mots incompréhensibles. De nouveau des murmures, des quolibets, des exclamations montent du côté des femmes.

- Ah... tiens.. vraiment il est beau.. quelle taille... mais comme il est timide... il n'ose pas même lever les yeux...

Mais pourquoi ne parle-t-il pas? Pas même un mot de gratitude à l'adresse de cette belle fille.

Ainsi on rit, on fait des plaisanteries et on avance. L'habitude veut que cette cérémonie se passe pendant la soirée. De grandes bougies illuminent le parcours. La demie obscurité qui régne encourage même les femmes les plus timides à plaisenter librement. Arrivés au futur foyer tout le monde se réunit dans la salle, le prêtre prononce les mots rituels et dit qu'il sont liés par le mariage. Jusqu'au matin des réjouissances, des attractions, des danses enchantent les invités et pendant trois jours la fête continue...

Au cas d'un refus de la part des parents de la jeune fille, le jeune amoureux, s'il obtient l'accord de sa belle, l'enlève. Comme c'est facile à imaginer; l'enlèvement d'une jeune fille est une chose bien périlleuse. On peut risquer même la vie. Cet enlèvement est considéré comme un acte tout à fait honnête et même chevaleresque.

Le jeune homme accompagné de ses frères, cousins ou amis fait l'exploit. Le «grand» du pays ou des chefs et des notables interviennent. Souvent on trouve la possibilité d'un arrangement amical.

En tout cas tant que le mariage n'est pas conclu le jeune homme respecte la jeune fille. C'est là une question d'honneur. Des chansons prétendent que la jeunesse doit avoir un pareil souvenir et que ce souvenir arrive toujours à dissiper les malentendus, même graves du ménage.

Les craintes, les soucis, les frissons, les risques, les souffrances est les joies éprouvés par ces deux jeunes cœurs, les unissent pour toujours avec un charme indescriptible.

Un proverbe kurde dit : «celui qui ne veut pas mourir sur le chemin conduisant à la cousine (le mot cousine veut dire la bien-aimée) est un malheureux». Une coutume ancienne voulait qu'un enfant riche, devenu orphelin soit marié - même à l'âge de 10 ans - afin de sauvegarder sa fortune; cette coutume ne s'appliquait qu'à l'enfant mâl parce qu'on accordait à la femme la plus grande confiance dans sa générosité et son honnêteté.

La petite fille qui devenait orpheline ne pouvait, elle, être mariée que vers l'âge de 16 ans. Je veux donner aussi un amusent exemple de la superstition kurde.

Dans certaines régions le chiffre 13 n'est jamais prononcé. En comptant on dit : onze, douze, plus est quatorze.

Une chose bien gaie aussi est de voir comment une jeune fille développe son goût et son talent de bien s'habiller. Elle s'entoure d'un nombre de poupées qui sont ses mannequins.

Sur des chemises, des robes, des pyjamas des couvre-chefs faits pour la poupée, la jeune fille laisse courir sa fantaisie élégante. Ces vêtements après mille changements et modifications lui servent de modèles ainsi qu'à ses amies. Le travail des tapis, des kélims, des convertures, des chales, des broderies contribue énormement à ce perfectionnement artistique tant au point de vue couleur qu'au point de vue dessin. Ces travaux d'art sont souvent exécutés sans modèle, œuvre de l'inspiration et de la fantaisie artistique pleine d'imprévu, de caprice et d'imagination... Devant le métier chantant, bavardant, si le secret du cœur est déjà

trop lourd rêvant elle travaille et produit ces chef-d'ouvres d'un goût sûre d'une richesse fine et d'une coloration éblouissante. Leur marbre c'est la laine. Ce travail a aussi sa littérature.

Les chansons dénoumées «chants devant le métier» composées et chantées par les jeunes filles sont sprituelles, pleines de malice et de coquetterie. Sous les ombres des arbres, des grands rochers, à l'entrée des grottes fréquentes dans les montagnes du pays on rencontre souvent des jeunes filles assises devant leur métier bavardant avec un jeune homme. C'est un plaisir considéré comme tout à fait innocent.

Mais si le métier au lieu d'être devant elle est à l'écart on arrive à penser facilement que la relation a dépassé le simple fleurt. Concernant le travail du métier elles ont une coutume qui est saisissante. Si pendant l'exécution d'un travail par la maitresse de la maison, son mari vient à mourir on laisse le travail inachevé et on en fait cadeau à une personne étrangère à la famille, chère au défunt. Ainsi j'ai reçu de la femme de Derwiche Aga, le chef des Yézidis de la Syrie le kélim à moitié tissé, après la mort de son époux tué par un autre Yézidi.

Ce dernier avait disparu au cours de la guerre générale et Derwiche Aga le considérant comme mort avait autorisé sa femme à se remarier. Le disparu revenant au pays après une absence de 11 années tua le Aga le considérant responsable de cet abandon, Les kurdes ont beaucoup de respect pour les morts et un culte pour leur souvenir. Chaque endroit où le sang humain a coulé est indiqué par la pierre qu'érige un des amis du mort.

Les passants ajoutent d'autres pierres à à celle ci pour sauvegerder pieusement les noms de l'oubli. Les cimetières sont soignées et proprement entretenues. On vénère les morts par un feu brulé durant trois jours dans la chambre mortuaire, puis pendant une semaine à côté de leur tombeau. Ceux ci sont costitués par une colonne de marbre de 2 à 3 mètres de hauteur sur laquelle pour un homme on grave des dessins : poignards, fusils, outils de travail, aigles ou cercles symbolisant le Soleil alors que pour les femmes l'ornement consiste en dessin de fleurs : marguerites, muguets, ou d'objets de coquetterie : peignes, bracelets etc... Les cimetières en général sont situés hors des villages et des villes, sur les collines.

Planter des arbres aux cimetières est une coutume. On considère que les ombres des arbres donnent le repos à l'âme dans le calme éternel. Les arbres de Judée sont les préférés.

Les kurdes ont un amour excessif pour les animaux, et une véritable vénération pour le coq et l'aigle. Le coq symbole de la gaieté qui par son chant joyeux annonce le lever du soleil et tel le sage, prédit les malheurs dans son chant intempestif.

On prétend q'une fois dans un village du plateau de Hewreman et une autre fois à Mamed dans la région de Pijdère les coqs chantèrent pendant la soirée.

C'était un présage de malheur, auquel personne ne fit attention; la même nuit ces villages étaient détruits. Dans ces régions on ne tue jamais un coq.

Pendant les mariages on fait tournoyer un coq autour de la jeune mariée pour lui assurer le bonheur, la lumière fraiche et l'indépendance dans la vie.

Si un coq est introuvable il est remplacé par une statuette de coq préparée spécialement pour cet usage.

Des aigles accompagnent souvent les chefs dans leur déplacement.

Le printemps passe, le nouveau né rit et devient dans la joie un jeune homme et se marie, le vieillard répète ce mot devenu un proverbe kurde : «La mort ! Oui; mais non la vieillesse».

Dr. K. A. BEDIR-KHAN

---

De la grammaire kurde

## DÉCLINAISON DU PRONOM
### (suite)

Prenons le verbe transitif (ditin-voir). Conjugons son indicatif présent :

| | |
|---|---|
| Ez dibin im | Je vois |
| Tu dibin i | Tu vois |
| Ew dibin e | Il, elle voit |
| Em dibin in | Nous voyons |
| Hon dibin in | Vous voyez |
| Ew dibin in | Ils, elles voient |

On voit distinctement les désinences de chaque personne qui au pluriel sont les mêmes. Citons le passé composé du même verbe.

| | |
|---|---|
| Min dit | J'ai vu |
| Te dit | Tu as vu |
| Wî, wê dit | Il, elle a vu |

| | |
|---|---|
| Me dit | Nous avons vu |
| We dit | Vous avez vu |
| Wan dit | Ils, elle ont vu |

Conformement à la régle, ci dessous mentionnée,ce sont les pronoms-complément qui ont pris la place des pronoms-sujet et en conséquence le verbe est resté sans désinence, puisque la terminaison est l'effet de l'accord avec le pronom-sujet et que ce dernier manque, et alors qu'il traine les désinences comme partie intégrale de son propre être.

Conséquemment dans la phrase «Zin a vu» Zin — bien qu'elle soit sujet — et parce qu'elle se trouve à la place du complément, sera déclinée «Zinê dit» et au contraire dans la phrase «J'ai vu Zin» Zin, bien qu'elle soit complément ne se décline pas, puisqu'elle s'est intervertie avec le sujet «Min Zin dit».

Dans les phrases suivantes nous retrouverons les désinences des verbes qui avaient disparu pendant la conjugaison de ces derniers sans complément.

Zin m'a vu

| | |
|---|---|
| Zinê ez ditim | Wê ez ditim |

On voit bien distinctement que la désinence du verbe n'est que l'accord de ce dernier, non pas avec le sujet logique, mais avec le complément qui en son origine est un pronom-sujet, de sorte que toujors c'est le sujet logique qui se décline.

Autres exemples :

| | |
|---|---|
| Min (me) tu diti | Je t'ai vu, nous t'avons vu |
| Min (me) ew dit | Je l'ai vu, nous l'avons vu |
| Min (me) hon ditin | Je vous ai vu, nous vous avons vu |
| Min (me) ew ditin | Je les ai vu, nous les avons vu |
| Te (we) ez ditim | Tu m'as vu, vous m'avez vu |
| Tê (we) ew dit | Tu l'as vu, vous l'avez vu |
| Te (we) em ditin | Tu nous as vu, vous nous avez vu |
| Te (we) ew ditin | Tu les as vu, vous les avez vu |
| Wi (wan) ez ditim | Il m'a vu, ils m'ont vu |
| Wi (wan) tu diti | Il t'a vu, ils t'ont vu |
| Wi (wan) em ditin | Il nous a vu, ils nous ont vu |
| Wi (wan) hon ditin | Il vous a vu, ils vous ont vu |

## NOM DE NOMBRE ET VERBE

Des parties variables du discours il ne reste que le nom de nombre et le verbe.

En ce qui concerne le nom de nombre nous nous contenterons de ce que nous avons exposé dans l'article traitant des parties du discours et nous reserverons les détails pour l'article le concernant.

Quant au verbe, le changement qu'il subit par le fait de la conjugaison c'est la forme de fléxion qui lui est propre.

Tout en réservant les détails du verbe pour l'article le concernant nous donnerons ici un tableau de conjugaison des deux verbes kurdes. Un intransitif et un transitif.

On forme les temps simples du passé en supprimant la terminaison. Dans le verbe intransitif on ajoute au radicale les désinences. Le verbe transitif se conjugue sans désinences.

| KET-in | | KIR-in | |
|---|---|---|---|
| Ez ketim | Em ketin | Min kir | Me kir |
| Tu keti | Hon ketin | Te kir | We kir |
| Ew ket | Ew ketin | Wi, wê kir | Wan kir |
| Ez ketime | Em ketine | Min kiriye | Me kiriye |
| Tu ketiyi | Hon ketine | Te kiriye | We kiriye |
| Ew ketiye | Ew ketine | Wi-ê kiriye | Wan kiriye |
| Ez diketim | Em diketin | Min dikir | Me dikir |
| Tu diketi | Hon diketi | Te dikir | We dikir |
| Ew diket | Ew diketin | Wi-ê dikir | Wan dikir |
| Ez biketam | Em biketan | Min bikira | Me bikira |
| Tu biketayi | Hon biketan | Te bikira | We bikira |
| Ew biketa | Ew biketan | Wi-ê bikira | Wan bikira |

| | |
|---|---|
| Ez dê biketam | Min dê bikira |
| Tu dê biketayi | Te dê bikira |
| Ew dê biketa | Wi, wê dê bikira |
| Em dê biketan | Me dê bikira |
| Hon dê biketan | We dê bikira |
| Ew dê biketan | Wan dê bikira |

On forme les temps composés du passé à partir de l'infinitif parfait.

| KETI-BÛN | KIRI-BÛN |
|---|---|
| Ez Keti bûm | Min kiri bû |
| Tu keti bûyi | Te kiri bû |
| Ew keti bû | Wi, wê kiri bû |
| Em keti bûn | Me kiri bû |
| Hon keti bûn | We kiri bû |
| Ew keti bûn | Wan kiri bû |
| Ez keti bwam | Min kiri bwa |
| Tu keti bwayi | Te kiri bwa |
| Ew keti bwa | Wi, wê kiri bwa |
| Em keti bwan | Me kiri bwa |
| Hon keti bwan | We kiri bwa |
| Ew keti bwan | Wan kiri bwa |
| Ez de keti bwam | Min dê kiri bwa |
| Tu dê keti bwayi | Te dê kiri bwa |
| Ew dê keti bwa | Wi, wê dê kiri bwa |
| Em dê keti bwan | Me dê kiri bwa |
| Hon dê keti bwan | We dê kiri bwa |
| Ew dê keti bwam | Wan dê kiri bwa |
| Ez keti bim | Min kiri be |
| Tu keti bi | Te kiri be |
| Ew keti be | Wi, wê kiri be |
| Em keti bin | Me kiri be |
| Hon keti bin | We Kiri be |
| Ew keti bin | Wan kiri be |

Le présent, le subjonctif et le futur se forment à partir de l'impératif. Dans ces temps la forme de conjugnaison des deux verbes s'unifie et tous les deux se conjuguent

avec les pronoms-sujet et reçoivent des désinences.

| Bikeve, bekevin, bikevin. | Bike, bikin, bikin. |
|---|---|
| Ez dikevim | Ez dikim |
| Tu dikevi | Tu diki |
| Ew dikeve | Ew dike |
| Em dikevin | Em dikin |
| Hon dikevin | Hon dikin |
| Ew dikevin | Ew dikin |
| Ez bikevim | Ez bikim |
| Tu bikevi | Tu biki |
| Ew bikeve | Ew bike |
| Em bikevin | Em dikin |
| Hon bikevin | Hon bikin |
| Ew bikevin | Ew bikin |
| Ez dê bikevim | Ez dê bikim |
| Tu dê bikevi | Tu dê biki |
| Ew dê bikeve | Ew dê bike |
| Em dê bikevin | Em dê bikin |
| Hon dê bikevin | Hon dê bikin |
| Ew dê bikevin | Ew dê bikin |

Ce tableau de conjugaison a été publié pour la première fois, en 1933 dans une brochure, traitant entre autres de la langue kurde, écrite par l'auteur de ces lignes.

ERRATA:

Dans le numéro 25, page 16, colonne 2 un nombre de lignes ont été omises par erreur; Il convient donc d'ajouter, après la ligne 11, le passage suivant:

Nous devons aussi donner quelques exemples des pronoms qui n'ont pas des formes spéciales de déclinaison et qui se déclinent d'après la règle générale.

| | |
|---|---|
| ez mirovan dibinim | ez hemiyan dibinim |
| je vois les hommes | je vois tous |
| ez Memi dibinim | ez filani dibinim |
| je vois Mem | je vois un tel |
| ez Zinê dibinim | ez filanê dibinim |
| je vois Zin | je vois une telle |

ez filanan dibinim
je vois tels, telles

| | |
|---|---|
| Tu kijani (kijiki) dibini | Lequel vois-tu |
| Tu kijanê (kijikê) dibini | Laquelle vois-tu |
| Tu kijanan (kijikan) dibini | Lesquels vois-tu |

D. A. BÉDIR-KHAN

SAL 9
HEJMAR 27

SÊŞEMB
15 NÎSAN 1941

# HAWAR

ANNÉE 9
NUMERO 27

MARDI
15 AVRIL 1941

## KOVARA KURDÎ ✶ REVUE KURDE

### TÊXISTIYÊN VÊ HEJMARÊ



### BIRÊ FRENSIZÎ



ŞAM—1941
ÇAPXANA SEBATÊ

SAL 9
HEJMAR 27

SÊŞEMB
15 NÎSAN 1941

# HAWAR

ANNÉE 9
NUMERO 27

MARDI
15 AVRIL 1941

KOVARA KURDÎ ★ REVUE KURDE

# TEFSÎRA QURANÊ

## 1— SÛREYÊ DESTPÊKIRINÊ

HEFT AYET IN, DI MEKÊ DE DAHATIYE

Bi navê Xudayê pak ê dilovan û mihrivan

Pesin ji Xwedê re ye, ji nav û kerema wî re ye, yê ko Xudanê erd û ezmana ye ✯ Rehman e; dilovn e; rehîm e; mihrivan e ✯ Xwediyê roja pişdawiyê ye ✯ Em ibadeta te dikin û ji te hêvîdar in ✯ Me bide ser riya rastiyê ✯ Riya wan mirovên ko tu li wan hatiyî rehmê; ne peyayên ko ketine ber xezeba te û ne kesên ko dane ser riya şaş.

## 2— SÛREYÊ ÇÊLEKÊ

DU SED Û HEŞTÊ Û ŞEŞ AYET IN DI MEDÎNÊ DE DAHATIYE

Bi navê Xudayê pak ê dilovan û mihrivan.

1 - E.L.M. Ji wan herfan miraz çi ye Xwedê dizane.

2 - Ew kitêb bê şik ji bona bawermendan rêke rast e.

3 - Yên ko baweriya xwe bi xeybê (mîna bihuşt û dojehê) tînin, nimêja xwe dikin û ji rizqê ko me daye wan, di riya xwedê da didin, arîkariya sêwî û belengaza dikin.

4 - Ew bawermendên ko bi kitêba ko ji te re dahatiye û bi yên ko berî Quranê dahatine bawer dikin û bi axiretê înaniya xwe tînin û pê ewle ne.

5 - Wan bi kerema Xwedê dane ser riya rastiyê û ewê bigehin rehm û qenciya Xwedê.

6 - Yên ko kufir kirine, tu wan bi ezabî bitirsînî an ne tirsînî mîna hev e, baweriya xwe bi Xwedê û bi axiretê na yînin.

7 - Xwedê dil û guhên wan mor kiriye û di ber çavên wan re perdeyek kişandiye, ji wan re ezabekî mezin heye.

8 - Hin hene ko dibêjin me baweriya xwe bi Xwedê û bi roja Axiretê aniye lê wan di rastiyê de baweriya xwe pê ne anîne.

9 - Ew qey Xwedê û mirovên bawermend dixapînin, lê ew nizanin ko pê bi tenê nefsa xwe dixapînin.

10 - Di dilê wan de nesaxiyek heye û Xwedê nesaxiya wan bêtir dike û ji bo derewên wan ji wan re êşandineke dijwar heye.

11 - Û gava ji wan re tête gotin di dinyayê de fesadî û tevdayiyê mekin, ew dibêjin em rastker in.

12 - Awan û tevdayî ew bi xwe ne, lê ew pê nahesin.

13 - Û gava, ji wan re tête gotin, mîna mirovên din hon jî baweriya xwe bi Xuda û bi pêxemberê wî bînin, ew dibêjin: em jî weke sefîhan pê baweriyê bînin; sefîh ew bi xwe ne, lê ew pê ni zanin.

14 - Ú gava ew bi bawermendan re ne, dibêjin wan: me baweriya xwe pê aniye û gava ew bi iblîsên xwe re bi-tenê dimînin ji wan re dibêjin em bi we re ne, lê em tinaz û henekê xwe bi wan dikin.

15 - Xwedê wê henekê xwe bi wan bike û wan bihêle ko ew di serhişkiya xwe de heyirî û ecêbmayî bimînin.

16 - Yên ko bi rastiyê nerastî kirîne, dan û standina wan tu kar ne daye û ew tucaran ne ketine ser riya rastiyê..

17 - Ew mîna mirovekî ne ko ji xwe re agirek dadide û dema ko agir dora xwe ronak dike, Xwedê ronahiya wan dibe û wan di tariyê de dihêle û ew nabînin.

18 - Ew ker, kor û lal in, ji riya xwe a xwar venagerin.

19 - An ew mîna wan in ko ketine bin ewrê ezmên ê têr deng û tarî, tejî avtav û birûsk; ji tirsa birûsk û kuştina xwe tiliyên xwe dikin guhên xwe. Xwedê bi halê kafiran dizane.

20 - Birûsk qey ronahiya çavên wan direvîne, gava birûsk dora wan ronak dike tê de diçin û dema ko li ser wan tarî dibe disekinin; heke Xwedê bixwesta bihistin û ronahiya çavên wan jî dê biçûya; Xwedê bi her tiştî dikare.

21 - Gelî mirovino, ibadeta Xudayê xwe bikin yê ko hon û yên berî we afirandine, ta ko hon ne kevin ber xezeba wî, ji ezabê wî xelas bibin û bigehin rehm û kerema Xwedê.

22 - Wî ji we re erd rast û ezman ava kiriye û ji ezmên baran barandiye û pê ji bona we zad derêxistine û wî ew kirine rizqê we û yê heywanên we; jê re tu kesî me kin hevber û hempa; hon ji xwe dizanin ko ew bê hevrî û hevber e.

23 - Heke, di dilê we de; di heqê vê kitêba ko me ji evdê xwe re şandiye xwar, şikek heye û ger hon di gotina xwe de, ko ew kitêb ne kelamê Xwedê lê kelamê Mihemed e dilrast in, ji Xwedê pêve heçî arîkarên we hene, banî wan bikin, bila ew ayetekê mîna ayetên vê kitêbê pêk bînin.

24 - Heke we ew pêk ve ne anî û pêkanîna wê bê şik ji we nayê, êdî xwe ji agirê ko ardûyê wî mirovên kafir û pûtên xaçperestan e bidin paş.

25- Pêxemberê min, mizgîniya mirovên ko baweriya xwe anîne û qencî kirine bide; ji bo wan bihuştine têr sih û dar hene û di wan de avên zelal diherikin û dema ko ew ji fêkiyên wê bihuştê bixwin dê bibêjin: Ew fêkî mîna wan in ko me berî di dinyayê de xwariye, lêbelê bi tenê nav û rengên her diwan weke hev e, û di wan bihuştan de ji bona wan jinên paqij hene û ew tê de her wê bimînin.

26 - Xwedê ji anîna qiyasekê bi kelmêşekê an bi tiştekî jê mezintir şerm nake û mirovên bawermend dizanin ko ew qiyas ji aliyê Xudayê wan ve heq e, lê nebawermend ji xwe dipirsin: Gelo qesda Xwedê ji vê qiyasê çi ye?

Xwedê pê gelekan dike ser riya xwar û gelekan jî digehîne rastiyê; lê xwedê bi tenê kafiran dike ser riya xwar.

27 - Yên ko li ber Xwedê swind dixwin û bi yekîtiya Xwedê û fermanên wî muqir tên û paşî bextên xwe dişkînin û tiştine ko Xwedê bihevgihiştina wan emir kiriye ji hev dûr dêxin û di dinyayê dê fesadiyê dikin ziyandîtî ne.

---

Bi kerema Xwedê me tefsîra Quranê qedandiye û em wê di rûpelên Hawarê de belav dikin.

Di çêkirina wê tefsîrê de me li kitêbên jêrîn bûr mêze kiriye.

«Tibyan»; tefsîra Quranê - Çapxana Arif Efendî; Derseadet 1324. «Mewakib»; Tefsîra Quranê - Çapxana Arif Efendî; Derseadet 1324.

« Tefsîra Quranê » Celaleyn: Celal-ed-dîn Muhammed; Celal-ed-dîn Ebdir-rehman; Çapxana Haşimiye Şam 1357 Hc.

«Qurtebî»; Tefsîra Quranê; El-Qurtebî; Qahire-1933.

Tercima Quranê bi zmanê elmanî. «Der Koran» von Max Henning Leipzig 1901; Druck und Verlag von Philipp Reclam jun.

Dr. Kamiran Alî Bedir-Xan

## HEDÎSÊN CENABÊ PÊXEMBER

«REHMET Û SILAVA XWEDÊ LÊ BE»

1 - Ji bona her derî mifteyek heye, mifta bihuştê ew e ko mirov ji biçûk û belengaza hez bike û li halê wan bipirse.

2 - Heçî malê miletî bê rê dixwin para wan dojeh e.

3 - Bawermend divê bi şûr û gotina xwe cihadê bikin û piştа zilm û neheqiyê, derewker û zalima bişkînînin.

4 - Xwedê qenc e, ji qenciyê hez dike; pak e, hejî paqijan dike; comerd e, ji comerda hez dike.

5 - Di roja piştdawiyê de piraniya xelkê ji ber gotinên bêrê û beredayi wê bêne êşandin.

6 - Dev û dranê xwe her paqij bigirin.

7 - Piştî imanê tiştê çak ew e ko xelk ji hev û du hez bikin.

8 - Hon brayê hev in, arîkariya hev û du bikin, rastiyê bêjin hev û li hev xedarî û bêbextiyê me kin.

9 - Yê ko baweriya xwe bi Xwedê û bi axiretê aniye an qenciyê dibêje yan devê xwe digire.

10 - Ji gulçîçekên pengava û ji jinên spebî û bêesil xwe biparêze.

11 - Ma ji çavtengiyê girantir nexweşî heye?

12 - Gotin carna sihrek e û şiir carna hikmetek e.

13 - Gava dest bi karekî dikin devê xwe bigirin, xelk ji mirovên ko îşê wan li rê ye dibeicin.

14 - Ji nifirê bêsûça bitirsin, navbeyna wan û Xwedê da tu perde nî ne.

15 - Ne bixweziya lê bi xebat û kirinê jiyîna xwe biborîne.

16 - Lok girêde û piştre bispêre Xwedê,

17 - Ko qiyamet rabû û di destê te de şitilek hebe û kês pê ket divê tu wî şitilî bişitilînî û ji destê xwe bernedî.

18 - Gava yekî ji we eniri divê ne peyive.

19 - Yê ko timakar e; belengaz e.

20 - Yê ko zekatê dide û mêvana dihewîne û arîkariya mirovên ko ketine tengasiyê dike ne çavteng e.

21 - Heke hon bi malê xwe ni karin arîkariya xelkê bikin bi gotinên şêrîn qedrê wan bigirin.

22 - Dînê islamê qaim e, ibadeta xwe nerm, nerm bike û zorê li nefsa xwe me de, me be mîna mirovê ko bar û serbarê heywanê xwe giran dike, pişta heywanê wî qul dibe li çol û şevderê dimîne, û na gihe hevalê xwe.

23 - Din tiştekî hêsanî ye, kes ni kare zora diyanetê bibe, dîn zora her kesî dibe, ne pir bikin, ne hindik bikin, bi can û bên bikin.

24 - Kirina qenciyê şabûniya dil e; û xirabî di canê mirovan de birînek e û ew naxwazin ko kes pê bibese.

25 - Qenciyê ji dê û bavê xwe re bikin da zaroyên we ji qenciyê ji we re bikin.

26 - Xatirê xelkê bigirin, dilê xelkê meşkînînin.

27 - Dev ji xirabiyê berdan sedeqe ye.

28 Nefsbiçûk bin ta ko kes li kesî mezinahiyê ne ke.

29 - Emanetê bidine xwediyê wî, beke kesî bêbextî li te kir tu bêbextiyê lê me ke.

30 - Rizqê xwe ji xebata xwe bixwazin.

31 - Rizqê xwe ji axê bixwazin.

32 - Rizqê xwe ji keda cotê xwe bixwazin.

33 - Yê ko derdê xwe vedişêre sewabeke mezin digihê.

34 - Heke tu şerm na kî her tiştî bike.

35 - Dev ji hevalên ne çak berde, an ne xelk wê bizanin tu kî yî.

36 - Îşê ko tê de poşmanî heye me ke, ko te kir poşman me be û efiwa xwe me xwaze.

37 - Hevalekî qenc ji xwe re bibijêre, û xwe jê biparêze.

38 - Diyariya bidine hev hezkirina we bêtir dibe.

39 - Tohe gunehan radike.

40 - Tevdîr nîvê îş û debara we ye.

41 - Herweki mirov bi nefsa xwe re rast û qenc e divê bi xelkê re jî rast û qenc bibe, ji bona li hev hatina mirova bixebite û xêrxwazê xelkê be û di feqîriya xwe de jî li halê belengaza binêre; bi pêkanîna wan sê tiştan iman timam dibe.

42 - Berê cîranekî baş û dawî xanîkî qenc peyda bike.

43 - Berê li cîranekî baş bigere û pişt wî re li xanîkî qenc bigere.

---

(1) Me heft sed hedîsên Cenabê Pêxember wergerandine zimanê kurdî û em wan di rûpelên Hawarê de belav dikin. Ev hedîsên he ji kitêbên jêrin batine bijartin

« Teysir-el-wisûl ila cami-il-isûl min hedis-il-Resûl Ebdirehman bin Elî elmarûf bi ibn-il Deyba Eş-şeybanî Ezzûbeydî eş-Şafiî; çapxana Selefiye - Misir 1346 Hc. »

«Nuxbetun min el-kelam-en-Nebî; Eş-Şeyx Mistefa el-Xelayinî; Çapxana Misbah - Beyrût 1929»

« El Cami-is-sexîr min hedis-il-Beşîrin nezîr Li xatimet-il hif-faz Celalid-dîn Ebdir-rehman ibin ebî Bekir es-Siyûtî. Çapxane Hicazî; Qahire Misir«

## SÊ TARIXÊN HAWARÊ

15 GULAN 1932

18 TEBAX 1935

15 NÎSAN 1941

Ji ber ko Hawar di panzdehê Gulana sala hezar û neh sed û sih û didowan de hatiye dinyayê, di panzdehê vê Gulanê de diviya bû Hawar bibe nehsalî. Lê ji ber ko Hawar ji hejdehê Tebaxa sala hezar û neh sed û sih û pêncan heta panzdehê vê Nîsanê şev û roj û şeş salan pêde razaye û ji ber ko dêmên xewê, xewên rojê, di heyîna heyberan de nayine hesêb, Hawar îro bi tenê nûzake sêsali ye.

Di jiyîna Hawarê de sê tarîxên bîrawer hene. Me ew tarix di bin sernama vê bendê re şanî dan.

Tarixa pêşîn: 15 Gulan 1932. Di vê tarîxê de gazî û hawara Kurdan ji dil û devê wan ketine nav xêz û xêzikên çend rûpelan û kovareke kurdî anîne pê. Ji Kurdan re Hawar, Hawareke nû, Hawara zanin û danzanînê za.

Ev roj di jiyîna Kurdmancan a civakî û edebî de rojeke tarîxî ye. Di vê rojê de Kurdmanc bûn xwediyê elfabêke biserxwe, elfabêke Kurdî û ji nîrê elfabiyên miletên din, miletên biyanî xelas bûne.

Ev elfabê alek e, ala biserxwebûna heyîna me a edebî ye.

Berê di ser keleha me a edebî re alên biyaniyan li ba dibûn. Di vê rojê de Kurdmancan ew al daxistin, çirandin û li şûna wan ala xwe a milî daçikandin û ji hêsîriya wan bandêran filitin, xwe dan ber siha bandêra xwe û di vê qadê de bûne biserxwe.

Belê, elfabiya ko ji sala hezar û neh sed û nozdehan ve ez lê dixebitîm, min ew di wê rojê de, di rûpelên Hawarê de belav kir.

Kurdmancên ko pê hesiyan û hînî wê bûne îro zmanê xwe bi elfabiya xwe a milî û bêî tu dişwariyê dinivîsînin û kovar û kitêbên ko ketine çapê bi kêfxweşî dixwînin.

Lê Hawarê gelek dom ne kir. Hejmara wê a bîst û şeşan di 18ê Tebaxa 1935an de belav bû û ji hingê ve Hawar nema derket.

Lê hîmê xwendin û nivîsandinê, elfabê belav bûbû û piştî razandina Hawarê ji gelek û hergav nebin jî carcara bin kitêb diketin çapê û digihan destê kurdmancan.

Di wan salan de ji kurdên ko bîrewerê heyîna xwe ne û di dilê wan de rûmeta milet û welêt heye bi hînbûna xwendin û nivîsandina zmanê xwe xebitîn û zanîna xwe pêş ve birin. Ew ne bi tenê xebitîn û elimîn, lê xebitandin û elimandin jî. Belê ew ji vî miletê bêdibistan re bûne dibistan, dersa welatiyên xwe gotin û ew gihandin; ji wan mirovên nezan mirovine xwenda anine pê.

Lê yên ko xwe, bi gotinê, Kurdên qenc û welatparêz dihesibînin wextê xwe bi kurt û pistên pûç û vala derbas kirin û ji lewre hêj (e) û (ê) ji hev ferq nakin. Lê ew bi zmanê biyniyan û hinekê wan bi çendekan dizanin, û hin hene ko di wan zmanan de xwenda û zanayine xurt in jî. Lê bi zmanê xwe ê mader, bi vî zmanê şêrin û delal, bi zmanê da û dapîr, bi zarê kal û kalikên xwe nizanin.

Mirov dibêje qey ew ji bin hikmê bandêra biyaniyan naxwazin derkevin û hêsîrî bi wan şêrin e. Heke welê ye, divêt rayekî biyaniyan di wan geriya be. Rakî welê ko bi dizika bi wan ve bûye. Herwekî şairê sorî gotiye:

Her kesî kurd naseraw bî hez be bonî
[kurd ne ka
Pirsiyarî daye ley ka ta le babî xoy biga

Belê ew bi zmanê xwe ê mader nizanin. Ew zmanê ko xwendin û nivîsandina wî ji her zmanî hêsanîtir e. Min bi xwe ceribandiye, kurdekî nezan, li gora şehrazahiya xwe di wextekî gelek kurt da hînî elfabiya xwe dibe; ji pênc heta sih rojî.

Malxirabino! ma we ewçend wext nîne, hon ko ji bo hînbûna zmanên biyaniyan bi salan ve xebitîne û îro jî dixebitin, ji bona ko bikarin «fînfoneke» derewîn bi lêv bikin.

Kuro eyb e, şerm e, fehit e. An hînî zmanê xwe bibin, an mebêjin em Kurd in. Bê zman Kurdîtî ji we re ne tu rûmet e, ji me re rûreşîke giran e.

Pesn û şabaş û hezar pîroz ji wan re ko hînî xwendin û nivîsandina zmanê xwe bûne û bi vî awayî mifta heyîna xwe xistine bêrîka xwe û ji bin bandêra miletên biyanî bi der ketine.

Heyf û xebînet û hezar mixabin, nemaze ji wan re ko bi zmanên din dizanin bixwînin binvîsînin û elfabiya zmanê xwe hêj nas nakin.

Lê ji bo hînbûnê tucaran wext ne dereng e, û wextê hînbûnê li tu kesî nabore.

Yên ko bi elfabiya zmanê xwe nizanin, lê bi zmanên din gelek dizanin, divêt bizanin ko ev elfabê rojekê, ji wan dê bête pirsîn.

Lê kes nizane heke ew roj dûr e an nizing e.

Hingê bibêjin ji emê bielimin, li wan dê bête vegerandin : Me hêvî hebû em di te de mamostekî peyda bikin ne şagirdekî.

Xwendevanino, bi kurtî eve dîrokiya beft salên bêhawar, wek heft salên xelayê bê av û bê baran.

Tarîxa sisiyan panzdehê Nîsana sala hezar û neh sed û çel û yekê ye, yanî îro ye.

Hawarên pêşin, her bîst û şeş Hawar xebitîne kurdmancan hînî elfabiya wan bikin. Herwekî me li jor got, Hawar di nav miletê xwe ê bêdibistan de, kêm û zêde karê xwe bire serî.

Hawar dîsan dê bixebite û tiştekî din jî bi ser ve zêde bike : Gramêr.

Di Hawara pêşin de min elfabiya xwe belav kiri bû. Di vê hejmarê de ezê dest bi belavkirina gramêra xwe bikim. Ev di zmanê Kurdmancî a nivîskî de -gaveke nû ye. Ji xwe hîmê zmanekî li ser sê hêmanên bingehîn sekiniye : elfabê, gramêr û ferbeng. Me elfabê belav kir, îro ji dest bi belavkirina gramêrê dikin, ko Xwedê hez kir ferheng jî li pey e.

Em niho hinek bi gramêrê, bi gramêra zmanê xwe mijûl bibin. Gramêr çi ye? Gramêrzanan gramêr bi awayên têvel tarîf kirine. Bi kurtî gramêr tevayiya qeydeyên rastaxaftin û rastnivîsandina zmên e. Ev qeyde bi xwe ji zmên têne der. Belê herkes bi zmanê xwe ê mader bêî ko bide eqlê xwe rast daxêve. Ev rastî bi hin qeydan têtê pê û mirov dema xeberdanê de bêî ko bizane bi wan ve diçe.

Gramêrzan li van qeydan hûr dibin van ji hev derdixînin û disenifînin. Tevayiya van qeydan gramêr bi xwe ye.

Em bên ser gramêra zmanê Kurdmancî. Gramêra ko ez îro di Hawarê de belav dikim, min bingehên wê di sala 1929 an de li Hesiçê danî bûn. Ji hingê ve ez lê dixebitim. Pêrar min gramêreke dibistanî digel bînek û wezîfan çêkiri bû. Bi destpêkirina şer min nikari bû ez wê bigihînim çapê.

Lê ji milê din hewcedariya me bi gramêrê roj bi roj bêtir dibû. Xortên ko hînî xwendin û nivîsandinê dibûn, dibatin û li qeydeyên zmanê xwe dipirsin, gramêrek dixwestin.

Di vê navê de me destûra derêxistina Hawarê ji nû ve stand. Hingê min dest bi senifandina gramêreke din kir. Ne gramêreke dibistanî, lê bingehên qeydeyên gramêra Kurdmancî. Îro ezê vê gramêrê di Hawarê de belav bikim. Ji milê din min kitêbeke kiçik bi navê « Kitêba Sinemxanê » nivîsandi bû. Ev kitêba kiçik ji bo zarokan gramêreke piçûk e. Heke min pêk anî ji Hawarê pêve ezê eva ha jî bidim çapê.

Ev bend ji alîkî dîrokiya Hawarê, ji aliyê din pronivîsa xebata me ye. Beriya ko ez vê biqedînim herwekî di despêkêde min gilî û gazindên xwe ji kurdên zana û nezan kir, di xelasekê de jî ezê wezîfeyên wan ji nû ve pêş wan bikim. Tiştê ko min divêt ez ji were bibêjim, bi kurtî ev e:

Hîn bin, Hîn bin, Hîn bin
Hîn kin, Hîn kin, Kîn kin

Belê bi tenê hînbûn ne besî me ye. Divêt em hîn bikin, ji. Her kurdê ko xwendin û nivîsandinê dizane divêt yên ko nizanin bielimîne. Ji kurdê xwenda re divêt, heke ber destên wî de Kurdên nezan hinin, li wan bigere, wan peyda û hîn bike.

Bi hinan hînkirin bi qasî hînbûnê xweş e, heye ko xweştir û bi rûmetir e jî. Belê heke hînbûn berhevkirin û standin e, hînkirin dander û dayîn e. Ji xwe Kurdmanc bi nav û deng in ko destê danê ne.

Belê hîn bin û vê carê ji berê bêtir û çêtir û bi awakî tekûz. Berê di destên we de bi tenê elfabê hebû, niho gramêr jî gihaye wê.

XWEDIYÊ HAWARÊ

## DONGIYA ÇEQEL

Dibêjin ji Sîpanê
Direndeyên girs û hûr
Rabûn civîn bûne kom
Şêwrek dido çêkirin
Tev li Kotol civiyan
Gotin ji me pîr û can
Wek piling û şepalan
Kes napirse çi pê hat
Padîşahek me divê
Wiya bebin du wezîr
Dema yekî kire zor
Bila bînin dîwanê
Serê wiya bibirin
Da ko kesê tînawir
Me jî divê wekhevî
Darê peşkê gerandin
Padîşahî bû ya şêr
Piling, şepal bûn wezîr
Xulamî dan gurê şîn
Şikefteke pir mezin
Panzde ga û bist mihî
Eger raxer û xwarin
Şikefta wek goma pêz
Texteki ji zîv û zêr
Şêr rabû ser textê zer
Gotê ji deşt û çiyan
Bila bêne pîrozê
Heya dighê Îranê
Ji çiyayên gelek dûr
Her celebek zom bi zom
Şandiyên xwe rêkirin
Bû civata şandiyan
Pir in kesên bêîman
Dixwin beqê bevalan
Em wa dibin malmêrat
Guhdar be roj û şevê
Çend xulam û çend kizîr
Ne bihistin peyîv şor
Siltan bikit fermanê
Çendek holê bimirin
Li ser ê din nebit gur
Ne zînat û bêbavî
Heryekî yek kişandin
Dergevanî ya keftêr
Hirçê teral bû kizîr
Gotin tu î dûrebîn
Êxistinê çel bizin
Tev ajotin wî cihî
Anîn heya dikarin
Mehfûr tê da kirin rêz
Anîn danîn ji bo şêr
Ban kir gurê fermanber
Bêje wehş û koviyan
Kuta bin ji vê dozê

Gur siwar bû li piyan    Xwe da şikêr û çiyan
Kire gazî gurê mûr    Pê da dikir zûrezûr

* *
*

Di ferhenga direndan    Heye yekî bêeman
Ne şêr, piling û şepal    Jê ra nînin tu heval
Kavilê wî deq bi deq    Dibêjine wî weşeq
Mezin berê ewa bû    Mezinkî pir hêja bû
Tevan hez jê dikirin    Di riya wî dimirin
Nêçîrvanekî ew kuşt    Kaviland û cendek hişt
Kavil firot ticaran    Du ser sê ser bi peran
Ticar kavil wenda kir    Çeqelekî dît rakir
Li ser milê xwe danî    Kêfa xwe pir pê anî
Dema gurê piştbeşîn    Dikir gazî û qirîn
Çeqel bi sergiranî    Kavil di xwe weranî
Berê xwe da cihê şêr    Pêş şikeftê tije mêr
Dîtin vaye werşeq tê    Giş rabûn ser dest û pê
Hinan xeber dane şêr    Gotin şahê tac bi zêr
Piran ji me digot mir    Eve werşeq tête hir
Şêr dizanî ko werşeq    Namîne bê teq û req
Wê şerekî daxîne    Holê jê ra namîne
Zû ferman da hevalan    Tev Piling û şepalan
Hinek herin bo pêrgin    Hinek çekin firavîn
Serjê kirin ga û pez    Kavilandin pir bi lez
Çeqel dît îş rast gerî    Di kêvil de mirmirî
Dizê req û şekalan    Xwe dît li ser şepalan
Terî ji erdê dikişîn    Gelek oflaz dimeşîn
Hate devê derî şêr    Bo çeqelê necamêr
Gotê fermû cihanban    Bê te nînin tu siltan
Çiqas ko me kir qisûr    Ji me sito ji te şûr
Herçî tu çak bibînî    Li ser serê me deynî
Em li pêş te rûsarin    Tu gotinan nikarin
Şêr gelek bi qelaşî    Digot li pê dimeşî
Heya çûn ber textê zer    Hat pilingê dilawer
Çeqel rabû cihê şêr    Şêr û piling man li jêr
Her do jê ra bûn wezîr    Şepal dîsa bû kizîr
Bê kar hiştin mamê birç    Tev keftarê palanpirç

*
* *

Gava ko yek bû bê bav    Wê jê biçin dest û çav
Dê bikeve ber lingan    Bi gurmistên pilingan
Çeqel vaya dizanî    Serê xwe qet hilnanî
Şêr û piling welê man    Rawestîn ji ser lingan
Welê heya bû êvar    Li der man hirç û keftar
Kesek naşê xeberde    Nika bêhna xwe berde
Tev da bûne ker û lal    Şêr û piling û şepal
Di wê gavê bê guman    Çeqel gelek bû poşman
Nema karî xelas be    Dizanî ko wê nas be
Dê werê pilingê qij    Bigre dila wi a gij
Kirê xwe jê bişkîne    Çavan ji zo derxine
Berê kesên rîsipî    Ev pirs gotin pir li cî
«Donê gênê nabit rûn    Qereçî nabit xatûn»
Dema ro çû bû hingûr    Çeqelan kir zûrezûr
Çeqelê me ê teres    Jê rabû kêf û hewes
Wî jî weke hevalan    Xwe zanî di newalan
Bê hemd kire qîr û zar    Li direndan bû hawar
Hemî berve direvîn    Li dorhêlê dicivîn
Piling ne bi bêbextî    Çim kir rabû ser textî
Kavil ji ser hilanî    Çeqel di bin deranî
Bi gewriyê pihêt girt    Bi penceyên xwe ên xurt
Dil kir ko hîn bişdîne    Çavan ji zo derxîne
Şêr rahişte milê wî    Gotê: Berde vî seyî
Bo we nînin şûr û dar    Ez im îro fermandar
Bila were hirçê ker    Çeqel bigre bibe der
Sêpiyekê daçikîn    Zûka pêda daliqîn
Da ko tu kes carek din    Ji bîr ne ke tirsa min

JI DÎWANA CEGERXWÎN :

## DERDÊN CEGERXWÎN

Kurdmanc hemî axa û beg û mîr û mela ne
Hikmet eve her dem ko belengaz û geda ne
Axa û began destê sitem daniye ser wan
Talanker û diz û keleş û bê ser û pa ne
Şêxan û melan xişt û def û xayet û enwar
Wek gurzê giran dane milan, şêrên Xuda ne
Dûzex wekî mertal e bihuşt herwekî şûr e
Kurdan ji kul û derdê evan qîr û eman e
Her yek bi hezar rengî dixwin vî miletê dil
Lê ew bi xwe der bircên belek, xan û seran e
Zana ne li cem her yekî sed xap û du sed fen
Kurdmacê reben hov û dewar, dil û bela ne
Ma ez ne ji ber derdê evan bûme Cegerxwîn
Ev derd e li nav Kurd e wekî janê di can e

*
* *

Miletê Kurd her tinê maye li dinyê bê serî
Bes yekîtî tê de nîne her eşîrek sed kerî
Rencberin bêrêber in, dijmin li ser wan tim [siwar
Tev mela û şêx û sofî, tev mirîd û serserî
Begler û axa egît in, dijminên Kurd in ji dil
Rêber in bo kuştin û talan û ceng û berberî
Ger nexwîn in yek zman û berk û yek [armanc nebin
Her bibazin wer bixwazin vî berî nabin serî
Ew kesê birçî nebî nabêje ez Kurd im ji dil
Paleya dijmin dikin sed Ismet û sed Eskerî
Pir ecêb e ko di şerqê mane bê tarîx û deng
Her ji Ristem ta bi Hatem bo me tenha rencberî
Ey Cegerxwîn bes binale şehr û bazar [mane sar
Pûlfiroşan pûl firotin, te bi dest derma merî

CEGERXWÎN

---

Ji der da hat hirçê sor    Lê gij bû bûn pirç û por
Destê çeqel girt û bir    Bi sêpî da dar da kir

*
* *

Bi kirasê Sikender    Nabî şahê dilawer
Ne jî bi gurzê guhderz    Nabî xudan bax û rez
Bi derew û virkerî    Tu kar naçin wî serî
Herçî bike bê guman    Wê bikeve ber lingan
Çêtir nîne j'rastiyê    Yek pê dighê dawiyê
Herçî kesê lingê xwe    Dirêj ke ji cila xwe
Teqez pêşî xirab e    Wek daxwaza wî nabe
Di kirasê serweran    Nebî diçî tu deran
Ne biçe tu cihê kaş    Da nebînî xewnên şaş
Şîret ji bo guhdaran    Divê wekî guharan
Di sito ne sûsik in    Bi guh va binûsik in

Şam - Bindiq: 20-10-940    Osman Sebrî

STÛNA KEBANIYAN:

## KEBANÎ Û MAMOSTE

Xwendevanên ko çavên xwe li sernameyên vê bend û vê stûnê bigerînin heye ko berî ewilî bibêjin, gelo di vê stûnê de ji me re qala dirûtin û aşbaziyê wê bikin. Ji ber ko bi adetî di van stûnan de qala van tiştan dikin. Ji milê din wê lê ecêbmayî bimînin û ji xwe bipirsin; kebanî û mamoste bi çi awayî gihane hev û ji bona çi?

Lê heke wan sebr bi xwe da û bi nivîsara min ve çûn û ew xwendin ewê bibînin ko heq di destê min de ye û divêt kebanî û mamoste bigehin hev û di her kebaniya kurdmanc de mamosteyek hebe.

Bê şik, wezîfa jinan a pêşîn diyatî û kebanîtî ye. Ji bo jinan ji van pêştir tu wezîfe nîne û her kar û wezîfe di pey wan re têt. Lê gava mirov bala xwe dide û tesîra jinan li ser jiyîna miletan a civakî derpêş dike dibîne ko jin rasterê û nerasterê û bi awayên têvel li jiyîna miletan kar dikin. Ji lewre jinan ji wezîfeyên xwe ên eslî pê ve wezîfeyine din ên mihim hene.

Mêrên ko qedera miletan di destên xwe de digirin li ber destên jinan bi xwedî dibin, terbiya xwe a pêşîn ji wan digirin û tiştên ko di zarotiya xwe de dielimin heta axa gorinan ji bîr nakin û ew tim û tim li wan hikim dikin. Ji lewre medhelokê gotiye: « Kurmê şîrî heta pîrî».

Ji me jinên kurdmancan re ji van pê ve wezîfeke din jî heye. Ew wezîfe ji rewşa miletê me a xweser dizê. Ji lewre, jin û diyên Kurdmancan berê xwe didim we, ji we, ji we bi tenê re dibêjim.

Xwehên min ên delal, herweki hon jî dizanin derdê miletê me ê mezin û xedar nezanî ye. Nezanî nexweşiyek e, û dermanê wê zanîn e. Nik miletên xudan hikûmet û teşkîlat vê nexweşiyê di xestexaneyine xisûsî de derman dikin û ji wan xestexanan re dibistan dibêjin. Mamoste, bijîşkên wê xestexaneyê ne.

Miletê me, ne xwediyê wan xestexanan e. Miletê me miletekî bê teşkîlat, bê xwedî û serî, miletekî belawela ye û di bin hikmê miletine din, miletine dijmin de ye. Lê dijminê me ê mezin, ê meztir nezanî ye. Divêt em şerê wî dijminê xedar bikin. Di vî şerî de jî ji me jinên Kurdmanc re divêt ko arîkariya mêrên xwe bikin, zaroyên xwe bielimînin xwendin û nivîsandinê û wan ji nexweşiya nezanîyê xelas bikin.

Ev xebat ji me, ji jinên Kurdmac re ji hemî jinên dinyayê bêtir divêtin. Ji ber ko zaroyên xelkê gava diçin dibistanê berî her tiştî hînî zmanê xwe dibin. Lê yên me wekê diçin dibistanê bi zmanê xelkê dielimin û carina yê xwe ji bîr dikin, ji ber ko me dibistan nîne û zaroyên me diçin dibistana xelkê.

Ji lewre diyên kurdmanc ji diyên her welat û miletî bêtir divêt bi xwendina zarokên xwe mijûl bibin û beriya ko ew ji destên wan bifilitin û bikevin dibistana xelkê wan hînî xwendin û nivîsandina zmanê wan bikin.

Ji bona vê yekê jî ji diyên kurdmanc re divêt berî ewilî ew bi xwe hînî xwendin û nivîsandina zmanê xwe bibin da ko bikarin zarokên xwe jî hîn bikin.

Eve Hawar ji nû ve derket, yên ko kêm û zêde bi tîpên kurdmancî nas dikin, bi xwendina Hawarê dikarin zanîna xwe pêş ve bibin û yên ko yekcar nizanin divêt dest bi hînbûna elfabiya xwe bikin.

Xwehên min, ez ji we re sekinî me. Ji min re binivîsînin, tiştê ko ji bo hînbûnê ji we re gerek e, ezê wan bi dilxweşî ji we re bişînim . Bi pêkanîna daxwaza we xweş bizanin ez tu minetê li we nakim, lê mineteke mezin li xwe dikim, ji ber ko hon bi vî awayî rê didin min ko ez xizmeta welatê xwe bikim.

Xweyînginol ez careke din dibêjin, me jinên kurd ên îro, yên ko nifşê miletê me yê ayendê li ber destê xwe bi xwedî dikin, me du wezîfeyên giran hene: hînbûn û hînkirin. Ji lewre ji me re divêt berî pêşîn em bibin şagirt û di pey re mamoste; mamosteyê zarokên xwe.

REWŞEN BEDIR-XAN

## MARŞA XORTAN

Kurd in em şêrên çiyan in, dê bijîn serdest û gûr
Doza me tola welêt e, bistînin bi qevdê şûr
Heya dih me xwe ne nasî, lê îro bûne şiyar
Dêhrifîne sihna Kurdan, çi çiyan lat û zinar
Da cihan qenc zanî bit ko, Kurd êdî nabin zelîl
Nema datînin serên xwe, namînin bindest û dîl
Em welatiyên ciwan in, wek piling dikine qîr
Me divê yektî û xurtî, naxwazin bend û eşîr
Ji îro pêve di Asiya, serdestî dora me ye
Dê jêkin hemî serên ko, nebêjin va her we ye
Destê me şûr û tifing in, şopa me xwîn û [mirin
Xortino rabin dem nîzik bû, bo felatê şer kirin

Şam, Taxa Kurdan 21-7-1940

OSMAN SEBRÎ

# ÇIYAYÊ SASONÊ

Ev çiya wek pir çiyayên Kurdistanê çiyakî asê û pêgera wi dijwar e. Lê ne wek piraniya çiyayên mayi nenas e. Ji mêj ve bi xurti û mêrxasiya eşîrên têda, di welatê kurdan da bi nav û deng e.

Tevî vê bi nav û deng bûnê, ez bawer im, tiştên ko di heqê vî çiyayi da zanîn divê, her kurd nizane. Ji ber vê yekê, ez dixwazim zanîna xwe ya di heqê vî çiyayî û eşîrên wi da serpilkî raveyi xwendevanên Hawarê bikim.

Çiyayê Sasonê : Di nîveka Kurdistana bakur û navbera bajarên Sêrt, Mûş, Bidlîs û Diyarbekirê da bi navê çiyayê Sasonê çiyayek heye. Ev çiya ji berê da bi dijwariya cih û mêraniya xelkê têda bi nav û nas e. Ji roja ko biyani ketine welatê kurdan heya îro xelkê wi çiyayî serên xwe ji wan ra danenin e û berê tifinga xwe ji singa wan ne guhastin e.

Ev çiya bi sînorên jêrîn dorgirtî ye. Rohelat : Motikan. Roava : Silîvan û Genc. Bakur : Deşta Mûşê. Nivro : Deşta Xerzan.

Ev cihê ko bi çiyayê Sasonê bi nav dibe, ji bîst û sê çiyayên mezin û biçûk biheketi ye. Çiyayên han her yek xweyi nav û bi geliyên kûr ji hev cida ne. Di nîveka van çiyan da, bi navên Karmilêh, Karnêk û Arzîv sê çiya hene ko bi bilindî û rêdijwariyên xwe hatine nasîn. Navbera van her sê çiyan bi çemên Artirêrê û kuskêt ji hev diqetin.

Çi gava ji xelkê Sasonê teng hatiye, anê hikûmetekê bi ser wan da girtiye, xwe avêtine serên van her sê çiyan û xwe di navçavên wan da ji hingên neyaran parastine.

Piştî ko me Karmilêh, Kornêk û Arziv ji çiyayê Sasonê ra sernîvek nişan dan, rewşa erdnîgariya yên mayi holê dimine. Di rohelat da çiyayên Ferşek, Sipirgîş, Kêkirnûs, Pûragan û Şînas. Di roava da çiyayên Helqiz, Qendil, Ĥatûra, Qemtûra, Dêrqeretin û Ĥerşewat. Di bakur da çiyayên Horemor, Reben û Mereo. Di nivro da çiyayên Lele, Helizdirûnan, Şelaş, Mirîçine, Kekwas û Milêxaçê. Bi tevayiya van bîst û sê çiyan û dorhêl û kûntarên wan ra çiyayê Sasonê têle gotin.

Zivistana çiyayê Sasonê wek pir çiyayên Kurdistanê di dawiya çiriya pêşin da dest pê dike û heya nîveka gulanê bi serma, berf, teyrok û bager e. Xesma aşîtên ko ji nerm hûna berfê dadikevin, ji her bobelatê pirtir mirovan ditirsînin. Ji ber serma, berf û piraniya aşitan, ji bo biyaniyan, zivistanê di çiyayê Sasonê da gerîn dijwariyeke ko nayê li pî kirin.

Eşîrên Sasonê : Di nav û dorhêlên çiyayê Sasonê da hevde eşîr hene. Ji van eşîran Ezebo, Pisino, Zekerî, Mûsî, Bûbi û Şerwên di nav bîst û sê çiyayên ko me navên wan li jor gotî da dimînin. Herçî eşîrên Sarimî, Xî, Badikî, Bozikî, Bidiri, Şigo, Celali, Timoqî, Bekiran, Welo û Mehmûd di dorhêl û kûntarên çiyê da ne.

Ji van eşîrên han, hinek mezin û hinek biçûk in. Tevayîya gundên van eşîran digihin heft sed û panzde gundan. Ev gundên han, mezin û biçûk di zik hev da bêne hesibandin, her gundek 50-60 mal bi derdikeve.

Lê îro ev eşîrên han hemî ne di cihê xwe da ne. Ji sala 1925 an heya digehe sala 1940 î, ji şerên ko di navbera wan û tirkan da bûyî, eşîrên Şerwên, Ezebo, Mûsî Zekerî, Pisino û Bûbi di hev da ketin e, gundên wan hatine şewitandin, xelkê wan hinek di şer û hinek jî di riyên nefî û sirgûnan da hatine kuştin û yên mayi cihên xwe berdan e. Îro ew di ser û navçavên Karmilêh û Kornêk da dimînin. Herçî eşîrên mayî di cihê xwe da ne û xwe ne lebitandin e.

OSMAN SEBRÎ

NEŞREYÊN KURDÎ

# GELAWÊJ

Kovareke kurdî, li Bexdayê bi der têt, Kovarek bi her awayî, bi rûpel û nivîsar, hêja û dewlemend. Me çend bejmarên wê di destê nasekî xwe de ditin û li wan temaşa kirin.

Tarixa hejmara çaran, adara 1940 û tarixa a dehan, Îlona 1940 e. Li gora van tarixan û li goreyî ko Gulawêj kovareke mehî ye divêt hejmara wê a pêşin di meha Kanûna-Paşîn, sala 1939 an de bi der çû be.

Belê Gelawêj kovareke hêja ye. Heye ko ji hemî kovarên kurdî yên ko heta niho derketine tekûztir e ji. Lê efsûs, me nizanî bû em wê bi temamî bixwînin û seh bikin. Ji ber ko ew ne bi tîpên kurdî lê bi tîpên erebî bati bû çap kirin.

Herçend zarê nîvro ji me re hinek zehmet be jî bi tîpên kurdî her zarê zmanê me xweş têtê xwendin. Lê kurdî bi tîpên erebî an bi tîpine din, dimîne wî mirovê ko xwe di nav cilên biyaniyan de veşartiye. Naskirina wî zehmet e. Me ew zehmet bi xwe da, lê dîsan me tiştekî hindik tê derêxist.

Ji xwe Gelawêja kurdî bi tîpên kurdî biketa

çapê me hin nivîsarên wê bi dilxweşî diguhastin rûpelên Hawarê.

Gelo Gelawêj çi ye? Di zarê me, di zarê bakur de hin Kurdmanc ji stêrekê re Gulavêj, xelkê Behdînan Gelavêj dibêjin. Divêt Gelawêj ew bi xwe be. Ji kovareke edebî re xweş nav e, navekî geş û spehî û têrabeng.

Xwendevanên Hawarê di nav nivîsevanên Gelawêjê de, şairê xort û xurt û şêrinzman Goran xweş nas dikin. Goran ji nivîsevanên Hawarê bû. Hawarê gelek caran rûpelên xwe bi şihrên Goran xemilandine.

Di hejmara Gelawêjê a çaran de şihreke Goran heye; bi sernama « Helbestî dildar ». Bi kêmahî jî be, em çend malikên wê şihrê diguhêzinin hire:

Wek sere rûyî şwên amanc
Ne zaza me, ne' kurmanc,
Geram Kurdistan
Germiyan û kwistan
Ne le şar û ne le dê
Nem dî kes
Wek tu ciwan bî
Tu yî, tu bes
Keçe kurdêk wek gul wa bî
Kurdistanî pê ewa bî.

Di nav nivîsarên Gelawêjê de nivîsareke Tewfîq Webbî begî çavên mirov ber bi xwe ve dikişîne. Nivîsara Wehbî begî çend bendên peyhev in. Me her du ên pêşîn ne dîtine. Lê ji yên ko me dîtine dixuye ko Tewfîq beg li bêjeyên « Kurd, kurdmanc, kurmanc, kirmanc » hûr dibe, toza hezar salan ji rûpelên tarîxê dadiweşîne, kûr lêdixe, dikeve zandûrên teng û tarî, xelekên jihevketî digihîne hev, zencîra nav û bernavê me hildigire, dide kaş û berwarên asê û li xeleka wê a pêşîn digere; dixwaze bizane gelo bêjeya « Kurdmanc » bi mana « mirovê kurd » e, herwekî « englishman » bi mana « mirovê ingilîz » e.

Lihev û jihevxistina pêr û parkitan çi netîce bidin jî heqîqeteke eşkere ye ko kurdmanc mirovine kurd in û ne mirovne nekurd.

# LORIYA ŞEHÎDAN

ADAPTATION DE L' HYMNE DE VICTOR HUGO
« A CEUX QUI SONT MORTS POUR LA PATRIE »

Mêrên ko ji bona serbestiyê,
Ji bona azahiya welatê xwe mirine,
Hêja ne ko milet gî bê
Û di pêşiya gora wan de bisekine.
Di nav navên spehîtir de,
Yên çelengtir navê wan e.
Kubarî û her mezinahî,
Di pêşiya wan de bê rewş û zînet in.
Herçend jî wan di axa reş de,
Xwe dirêj kirine
Mîna dayikeke delal
Milet ji wan re dilorîne.

Şan û mezinahî bi te dikeve
Welatê delal û abadîn.
Şan û şeref bi wan dikeve
Yên ko qurbana te bûne.
Di nav ax û xwînê da.
Gelî Şehîdno.. Şehîdên welêt
Mêr, Mêrxas hon in;
Û yên ko didin ser şopa we,
Û mîna we divên bêne kuştin.

Serê çiyan û zozan li wan dinêrin
Siha tirba wan li wan xweş tê.
Ji ber ko singa milet in, ew tirb û gor,
Mîna taceke zêrîn roj lê dide,
Dema ko dinya dibe êvar û roj dibe sor.

Şan û mezinahî bi te dikeve
Welatê delal û abadîn,
Şan û şeref bi wan dikeve
Yên ko qurbana te bûne,
Di nav ax û xwînê da.
Gelî Şehîdino.. Şehîdên welêt
Mêr, mêrxas hon in;
Û yên ko didin ser şopa we
Û mîna we divên bêne kuştin.

Mêrxasên ko canê xwe dane welat
Ji bîr na bin, ew in rêberên bi nav û deng
Hêja ne ko milet gî bê
Û li pêşiya gora wan de bisekine.
Navê wan her sax e, navên delal,
Her dibin mezintir û qedirgiran
Mezinahî bi wan dikeve
Bi wan dikeve şeref û şan.

Şan û mezinahî bi te dikeve
Welatê delal û abadîn,
Şan û şeref bi wan dikeve
Yên ko qurbana te bûne,
Di nav ax û xwînê da.
Gelî Şehîdino.. Şehîdên welêt
Mêr, mêrxas hon in;
Û yên ko didin ser şopa we
Û mîna we divên bêne kuştin.

(1) Loriya şehîdan ji şihrên şairê frensiz ê mezin Viktor Hûgo, (L'hymne) hate girtin. Viktor Hûgo di sala 1802an de bûye. Ew bi şihrên xwe ên spehî û hêja di ciwaniya xwe de jî bi nav û deng bû.

Ji welatê xwe Frensê gelek hez dikir û di şihrên wî de mirov dîroka Frensê dibîne. Ji ber ko ew pê re şa dibû, pê re digiriya û nivîsarên wî mirêka şan û şeref û derd û kederên Frensê ne.

# XURŞÎD

Xurşîd dewlementirê gund bû. Xorteki bi bejn û bal, çeleng û giran bû. Rojekê li ber melayê gund rawestiya û got ê:

— Kureki min çêbû; jêre naveki şirîn ji te dixwazim.

Mela hineki ma, paşê serê xwe rakir û got:

— Bila navê wi Cemşîd be!

— Wek navê min e, û di gund de naveki bi tenê ye, ji xwe min ji ev dixwest.

— Here, bi arîkariya Xwedê kurê te ji bo te û ji bo milet baş be.

Xurşîd, piştî ko spasên xwe ji melê re pêşkêş kirin, derket û bi dilgeşî çû mal.

***

Piştî şanzde salan rojekê Xurşîd dîsa çû cem mela, wek berê xurt û xweşik bû. Mela jê pirsî:

— Dîsan çi ye, mîrza xurşîd?

Îsal kurê min Cemşîd xwendina xwa bir serî, û di nav hevalên xwe da ê pêşin derket. Min divê îro jê ra mewlûdekê bidim xwendin. Ez hêvî dikim tu îşev xwe biêşînî bêî mala me û bi dengê xwe ê şirîn vê mewlûdê ji me re bixwînî.

— Cemşîd hêja ye, ezê jê ra mewlûdekê bi kurdî bixwînim,

***

Heşt salên din borin. Xurşîd dîsa rojeke bi çend mirovan ve li pêş mela rawesta. Mela lê nêrî û got:

— Tu her roj xurtir dibî; di rûyê te de nîşanên xortaniyê û jiyînê dixweyin. Ev ji çi ye?

Bê derd im seyda, çima pîr bibim?

— Min divê tu her we bî. Lê bêje dîsa çi ye?

— Min ji kurê xwe re keça camêreki xwestiye, dewlemend e, pir pere xwest. Lê kurê min yek e û li ber dilê min biha ye. Ji kerema xwe mehira wan bibire.

Mela mehir birî û ew pîroz kirin.

***

Piştî çend heftan Xurşîd û Cemşîd li ser keştike piçûk di golekê da diçûn bajêr, ji bo kirina cilên bûk û zavê. Ava golê bê pêl bû, di meha gluanê de bûn. Doraliyên golê bi kulilk û hêşinayiyê xemilandî bûn. Xurşîd li kurê xwe dinêrî û xwe bextyartirê dinê dizanî. Cemşîd wek di xewnekê de bû. Bi zendên xwe ên xurt, destikên keştiyê zû dilivandin û keştî li ser avê dişemitand. Lê carna xwe ji bir dikir, eqlê wi diçû cihên din.

Ji nişkê ve destikeke keştêiyê ket avê. Cemşîd zû vegerî ser û destê xwe drêjî wê kir. Di wê gavê da destê wi ê din jî, ji keştiyê şemitî û xwe ne girt, ket avê.

Lê Cemşîd melevanî ne dizanî. Bi carekê di avê da winda bû. Derket û kir hawar. Bavê wi dest avêt ê; lê ne gihayê. Cemşîd li ber çavên bavê xwe çû bin avê û nema bi ser ket.

Xurşîd bi çavên xwe bawer ne dibû û li benda derketina kurê xwe dima. Lê ji çend piqpiqokên avê pê ve tiştek xuya ne kir.

Xurşîd sê roj û sê şevan di wî cihî da ma. Roja sisiyan laşê kurê xwe ê nepixî da pişta xwe û bir mal; sibetirê ew veşart.

***

Piştî salekê bi şev li deriyê melê dan. Derî vebû. Melê li pêş xwe miroveki dirêj, kal, porsipî û piştxwar dît. Berê ew nas ne kir. Paşê melê kûr nêrî û got:

— Ma tu ne Xurşîd î, vê nivê şevê te xêr e?

— Belê ez im, hatime tiştekî bi navê kurê xwe Cemşîd bidim te, ji bo xwendina zarokên gund ên belengaz Xurşîd rabû kîsek pere danî ser masê.

Mela got:

— Ev pere pir in pir.

— Belê, îro min nivê zeviyên xwe firotin. Cemşîd dixwest bi destê xwe ji miletê xwe ra qenciyên mezin bike. Lê Xwedê ne hişt. Niha ez deynê wî didim.

Melê destê wî girt û bi dengeki nerm gotê:

— Cemşîd kurekî baş bû. Xwedê rehma xwe lê bike. Lê dinêrim tu pir li ber dikevî. Ew tişt li min jî qewimî. Were, emê hejkirina xwe bidin zaroyên gund û ji wan, xortên xwenda, xurt û hêja binin pê.

Xurşîd li ser gotina melê hineki pêjinî, pişt re serê xwe rakir û li melê nêrî. Di çavên wî da ronahiyeke dijwar hebû. Xurşîd dilê xwe da bû zaroyên gund.

***

Xurşîd malê xwe, mela zanîna xwe dabûn milet. Piştî şanzde salan di gund da daweta çil xortên hêja, xwenda û milet-perwer çêdibû û Xurşîd tê de bi serê sergovendê girtî bû.

NÛRIDÎN ÛSIF

## BINGEHÊN
## GRAMÊRA KURDMANCÎ

BI NAVÊ YEZDANÊ PAK Ê DILOVAN Û MIHIRVAN

### RÊMANÊN BERPÊŞKÎ

1 — Gramêr : Gramêr tevayiya qeydeyên rastaxaftin û rastnivîsadina zmên e.

2 — Zmanê Kurdmancî : Zmanê kurdmancî zmanê miletê kurdmanc e. Kurdmanc pê daxêvin, dinvîsinin û bi gotinên din his û fikrên xwe pê eşkere dikin.

3 — Hêmanên zmên : Di zmanê devkî de hêmanê bingehîn deng e. Deng bi tîpan têne sekinandin û bi wan, zmanê nivîskî dest pê dike. Bi tîpan kît û bi kîtan bêje bi hev dikevin. Pirîcar bêje an keseki an tiştekî dinimîne Û gava çend bêje bi awakî manadar digebin hev ji wan komek çêdibe. Komek fikreke tam dide zanîn.

Bi peyhevketina komekan qiset tête pê. Qiset bi mijarekê mijûl dibe û ew zman bi xwe ye. Ji gotinên jorin dixuye ko hêmanên zmên çar in :

Tîp : a g ê u y h o p m j
Kît : ta, den, ser, co, rût, a, poz, ê.
Bêje : hesp, peyar, xanî, spehî, gotin, were.
Komek : Par ez çû bûm Rewanê. Îro dinya sar e. Gundê me di navbera du avan de ye.

4 — Tîp : Her dengê ko di dev û qirika me de peyda dibe, li ser kaxezê bi işaretekê tête sekinandin. Ji wan işaretan re tîp dibêjin.

5 — Tîpên zmanê kurdmancî : Di her zmanî de herçend deng hene ewçend jî tîp peyda dibin. Ji ber ko di zmanê kurdmancî de sih û yek dengên bingehîn hene ji lewre tîpên zmanê kurdmancî sih û yek in.

Hûrek: a b c ç d e ê f g h i î j k l m n o p q r s ş t u û v w x y z

Girdek : A B C Ç D E Ê F G H I Î J K L M N O P Q R S Ş T U Û V W X Y Z

5 — Bi adetî û gelemperî em bi hûrekan dinivîsinin. Girdek kêm caran tên istîmal kirin. Komek bi girdekekê dest pê dike. Tîpa serenavekî a pêşin hergav girdekek e.

6 — Dengdayiya tîpan : Tîp ji awirê dengdayiyê ve bi du biran leva dibin : dengdêr û dengdar.

7 — Dengdêr : Dengdêr ew tîp in ko bi serê xwe ji devê me dertên û dengekî mûsiqayî tînin pê. Dengdêrên zmanê kurdmancî heşt in : a e ê i î o u û

8 — Dengdar : Dengdar ew tîp in ko bêî arikariya dengdêrekê nikarin ji devê me derkevin û dengekî mûsiqayî bînin pê. Ew di devê me de dikevin hin cihan, wek lêv, dran û ezmandev û ji wan pêjneke ker peyda dibe. Dengdarên zmanê kurdmancî bîst û sisê ne : b c ç d f g h j k l m n p q r s ş t v w x y z.

Şanek — Di pratîkê de dengdêr ji dengdaran bi awayê jêrîn têne derêxistin. Dengdêr bi serê xwe jî dikarin kîtekê bînin pê. Lê dengdar bêî dengdêrekê tu kîtê nayînin pê. Herwekî di kîta « par » de heke me dengdarên ( p ) û ( r ) xistin û ( a ) bi tenê hişt ew ( a ) bi serê xwe jî kîtek e. Lê ( p ) û ( r ) bêî ( a ) yê, an dengdêreke din, nikarin kîtekê bînin pê.

9 — Doma dengdêran : Dengdêr ji awirê domê ve bi du biran par dibin, kurt û drêj :

## DI RADYOWÊ DE
## WEŞÎNEKÊN KURDÎ

Hin radyowên rohelatê nîzing bi zmanê kurdî diweşînin. Em wan stasyonan li jêr û digel pronivîsa wan ji xwendevanên xwe re didin zanin.

### BÊRÛT : RADYOWA ROHELAT

Ji pêncê Adara vê salê ve ev radyo li heftê du caran, În û Çarşembê bi kurdmacî diweşîne. Her weşînek nîv saet dom dike, ji saet pêncan heta pênc û nîvan. Radyowa Rohelat li ser du pêlan diweşîne: pêlên kurt û pêlên navîn. Drêjahiya pêlên wê: pêlên kurt ( 37,35 ) pêlên navîn ( 293,50 ).

Şandiyarê Bêrûtê di her weşînekê de nûçeyên dinyayê dide zanîn û di pişt re çend qewanên kurdmancî dide gerandin.

Daxwazeke guhdaran hebe dikarin binivîsînin adrêsa jêrîn. Şandiyarê Bêrûtê daxwaza guhdarên xwe bi dilxweşî ditîne cih.

Adrês: Radyowa Rohelat. Şandiyarê kurdî H.C.F. Bêrût

### IRAQ : RADYOWA BEẌDAYÊ

Ev radyo jî destpêka vî şerî ve hero carekê bi kurdî diweşîne. Pêlên wê kurt (42) mêtr in. Weşînek piştî nîvro saet çar û çel û pêncan (4,45) de dest pê dike û çaryek saet dajo

Şandiyarê Beẍdayê nûçeyên dinyayê roj bi roj dide zanin. Carina jî hin qewanên kurdmancî digerîne.

### RADYOKE QEFQASÊ

Me çend caran ji stasyoneke Qefqasê stranine kurdmancî bihîstine. Lê heta niho me nizanî ew kîjan stasyon e, kengê û li ser kîjan pêlan diweşîne. Me gumana Rawanê kiriye. Me hêvî ji xwendevanên xwe heye heke pê dizanin bila ji me re bidin zanîn da ko em pronivîsa wê stasyonê jî di Hawarê de belav bikin. HAWAR

# FERHENGOKA HAWARÊ

Her çend zmanê me tête nivîsandin, ewçend jî fireh û dewlemend dibe û bi pêş ve diçe. Ev pêşveçûna zmanê me bi çêkirin û peydakirina bêjeyine nû tête pê. Ev bêje, bêşik, ji bemî Kurdmancan re ne nas in. Ji lewra em wan di Ferhengoka Hawarê de bi Kurdmancî mana dikin û miqabilên wan ên frensizî jî didin zanin. Ji bêjeyên vê Ferhengokê yên ko ne di bendên Hawarê de ne, hon wan ji şandiyarê Radyowa Rohelat dibihîsin. Lê heye ko hin xwendevanên me di Hawarê de rastî bêjeyina bên ko di Ferhengokê de ne hatine mana kirin û ew bi wan ne nas in. Heke wan xwendevanan ew bêje ji mere nivisandin em wan bi dilxweşi di Ferhengokê de mana dikin.

Di nav bêjeyên vê Ferhengokê de herçî bêjeyên ko xudan zayend in, tîpek li ber e. Ew tîp zayendê bêjeyê şanî dide: m. — mê, n — nêr.

AWARTE — Yê ko nakeve bin hikmê qeyda gelemper û jê tête awartin. Vê qeydê tu awarte nîne. Bi awarteyî destûra wî dan. Awarte tu qeyde nayînin pê. [ Exception ]

BERPÊŞKÎ — Yê ko beriya esas û bingeh têt û wan bi ronî dike û sehkirina wan pê hêsanî dibe. Rêmanên berpêşkî, qeydeyên berpêşkî. [ Préliminaire ]

BÎRAWER — Tiştê ko hêja ye di bîran de bimine û naye ji bîr kirin. Sala 1925 an ji bo kurdan tarîxeke bîrawer e. ] Mémorable ]

BÛYER ( m ) — Her tiştê ko di dinyayê de têtê pê. Ev bûyereke girane ye. [ Événemant ]

CENKEŞTÎ. ( m ) Herçî keştîyên ko ji bona şer hatine çêkirin. Gir û bûrên wan hene. Wek torpiyor, bertorpiyor, krewzor, dretnewt. [ Batiment de guerre]

GELEMPER — Tiştê ko ne xweser e, ji bo her kesî an ji bo her tiştî ye. Qanûna mirinê qanûneke gelemper e; tu kes jê nafilite. Bi gelemperî; bi awayê gelemper. Bi gelemperî Kurdmanc çiyayî ne. [ Général ]

HEYBER ( n ) Her tiştê ko xwediyê heyînekê ye; rihber, nerihber. Heyberên tebîetê. [ Objet, être ]

HÊMAN ( n ) — Esas an rikinên heyînekê. Ew tev de heyînekê ditînin pê, lê bi xwe ji hev de nakevin; yanî ew heyberîne sade ne û ne hevedidanî ne. Pêşiyan digot hêmanên tebietê çar in: ax, av, agir û hewa. [Élément ]

KEŞTÎ ( m ) — Jê re bi hin ferqan gemî û vapor jî dibêjin. Keştî xwerû Kurdmancî ye. Keştivan: peyayên ko di keştiyê de dixebitin û wê bi rê dixin; mîna Kelekvan. [ Bateau ]

NÊREVAN ( n ) — Yê ko guhdariya tiştekî dike, lê kûr dinêre û bala xwe dide; nêrevaniyê dike. Nêrevanên siyasî, balafirên nêrevaniyê. [ Observateur ]

NOQAR ( m ) — Keştiya ko noqî avê dibe û di bin avê re diçe. Noqar cenkeştiyek e, tê de top û torpîl bene. Dûrebîneke wê heye ko di ser avê re dimîne. Kumandarê noqarê pê guhdariya keştiyên dijmin dike û gava ew wan dibîne noqar dertêt rûyê avê û li wan dixe. [ Sous marin ]

NÛÇE. ( m ) Tiştê ko ji nû ve qewimiye. Nûçeyên şer, nûçeke derewîn, li gora nûçeyên radyowê di şeşê Nîsanê de elmanan drêjî Yewnanistan û Yûgoslavyayê kirine. [ Nouvelle ]

PARKÎT ( m ) — Kîta ko dikeve paşiya bêjeyekê û mana wê diediline. [ xew - xewar. mêr - mêranî, mal - maldar ] di bêjeyên [ xew - ar, mêr - anî, mal - dar ] de [ ar, anî, dar ] parkît in. [ Suffixe ]

PÊRKÎT ( m ) — Kîta ko dikeve pêşiya bêjeyekê û mana wê diediline. ( bûn - vebûn, kirin - rakirin, anîn - hilanîn ) di bêjeyên ( vebûn, rakirin, hilanîn ) de « ve ra, bil » pêrkît in. [ Prefixe ]

RÊMAN ( m ) — Fikra ko me der heqê tiştekî heye. Tu rêmana mêraniyê di wî de nîne. [ Notion ]

ŞANDIYAR ( n ) — Mirovê ko ji stasyoneke radyowê nûçeyan û tiştine din diweşîne û belav dike. Di Radyowa Rohelat de şandiyarê kurdî li heftê du caran bi kurdmancî diweşîne. [ Speaker, emetteur ]

TÊVEL — Ne ji yek cisn û celebî, ji cisnine ji hev cida û biferq; ne weke hev. Ordiwa ingilîzan ji eskerine têvel bihevketî ye. [ Différent ]

WEŞÎNEK ( m ) — Karê belavkirinê, herwekî di radyowê de. Weşîneka kurdî nîv saet dom dike, di vê weşînekê de şandiyar nûçeyên dinyayê dide zanin û pişt re dest bi pronivîsa stranê pike û çend qewanên kurdmancî digerîne. [ Emission ]

FERHENGVAN

---

Dengdêrên kurt: e i u
Dengdêrên drêj: a ê î o û

Dengdêrên kurt bi derbekê ji devê me dertên, devê me bi nîvî vedibe, doma wan hindik e, û ew tu caran drêj nabin.

Dengdêrên drêj gava ji devê me dertên dom dikin, devê me bi temamî vedibe û ew tucaran kurt nabin.

Herçend dengdêrên kurt ( e i u ) û dengdêrên drêj ( ê i û ) ji aliyê şikilî ve nizingî hev bibin jî, ji aliyê dengî ve ji hev dûr û gelekî biferq in. Ji ber ko cihderka heryekê cida ye.

10 — Xweseriya hin dengdêran: Dengdêrin hene ko nikarin bikevin pêşî an paşiya hin dengdaran. Hinên din jî di pêşî an di paşiya bêjeyan de peyda nabin.

I — Ev dengdêra ha bi gelemperî nakeve pêşî an paşiya bêjeyan. Yanî bêjeyên kurdmancî ne bi (i) yê dest pê dikin ne jî pê temam dibin; ji hin daçek û pronavan pê ve; mîna: li, di, ji, bi, çi

Ji milê din bêjeyên ko di eslê xwe de ne kurdmancî ne, û ji zmanê biyaniyan ketine zmanê me bi « i » yê dest pê dikin.

( dûmahîk heye ) C. A. BEDIR - XAN

BIRÊ FRENSIZÎ

## LA REAPPARITION DE HAWAR

Après une interruption de plusieurs années, HAWAR reprend sa publication avec le présent numéro.

Notre revue poursuivra, comme elle a essayé de le faire jadis, la tâche de rénovation, de perfectionnement et de diffusion de la langue et de la littérature kurdes, qu'elle s'était fixée à ses débuts. Cependant, les progrès déjà réalisés en cette matière nous amèneront à lui donner des caractéristiques nouvelles, que nous tenons à expliquer ici au lecteur.

La première série de HAWAR (No 1 à 26) était essentiellement consacrée à la publication et à la diffusion de l'alphabet kurde en caractères latins. L'action de la revue, prolongée par celle des différentes brochures (alphabets, recueils de textes, etc.) publiées en même temps par ses éditeurs, a permis à un nombre considérable de jeunes gens Kurdes d'apprendre à lire et à écrire leur langue avec les caractères latins. De la sorte, il s'est constitué un public lettré kurde, auquel la revue se doit d'apporter aujourd'hui l'aliment intellectuel nécessaire.

C'est pourquoi l'on trouvera désormais, dans HAWAR, outre les textes de littérature populaire kurde qui y ont toujours eu une place de choix, de nombreuses études sur la grammaire Kurde. Les jeunes lettrés kurdes pourront ainsi parvenir à une connaissance méthodique approfondie de leur langue, de ses ressources et de ses richesses.

Un même esprit inspirera le contenu de la partie française de HAWAR. Nous continuerons à y faire figurer, à l'intention de nos lecteurs d'Europe, la traduction des textes littéraires kurdes publiés dans le même numéro sous leur forme originale. Mais nous y ajouterons, à l'intention de nos lecteurs kurdes, quelques textes choisis de la littérature occidentale, accompagnés d'une brève notice et de leur traduction en Kurde.

Nous espérons que HAWAR, sous cette nouvelle forme, retrouvera vite les précieuses sympathies qui l'avaient accompagné durant les premiers mois de sa publication. Nous efforcerons d'ailleurs de rendre cette revue toujours plus digne de l'estime des lettrés de l'Occident, comme de l'Orient; nous souhaitons qu'ils y trouvent un bon instrument pour l'étude de la langue et de la littérature kurdes, et nous accueillerons avec reconnaissance toutes les suggestions qu'ils voudront bien nous adresser pour le perfectionnement de notre oeuvre.

LA REDACTION

## LORIYA FATÊ

Ji Helebê me berê xwe da bû Kurdistanê. Di bîst û çarê Tebaxê, sala hezar û neh sed û nozdehan de, bi taştiyê ve em gihaşti bûn gundê Tabyê. Tabye gundek ji gundên Entabé ye. Ji bajêr qonaxek dûr e. Xelkê gund bêî ko me nas bikin derketin pêşiya me, em birin holika mezinê gund û ji me re pezek şerjêkirin.

Tabye gundekî kiçik e, tê da bîst xanî hene; şanzdeh xanî kurdmanc çar xanî tirk. Kurdmancan, ji bo tirkan digot ev reiyet in. Kurdmancên gund atimî ne. Tirkan jî bi kurdmancî xeber dida. Lê mirov ji serçavê wan dizanî ko ne ji nijadê me ne.

Di gund de yekî kal hebû bi navê Hisên. Hisên ji me re dîroka gund qise kir û got:

— Ji gundê me re Tabye dibêjin, ji ber ko di wextê şerê Brahîm paşayê misrî de tirkan tabye di gundê me de kola bûn, hêj şopa wan xuya ye (Bi destê xwe işaret kir û ew şanî me dan). Mîna îro, tête bîra min, tirk şikestin û eskerê Brahim paşa ketin gund û gund talan kirin.

Ji nifşê min di gund de hêj jinikek heye, Fatê dibêjin ê. Bi emr ez jê mezintir im. Lê rebenê, ji derd û xeman çavên wê tarî bûne. Kurê wê ê ciwantir di dawiya seferberiyê de hate kuştin. Bûka wê do ne pêr mir. Eqlê wê jî hinek sivik bûye, bi sêwiyê xwe ve di nav gund de digere û jê re dilorîne.

Fatê bi sêwiyê xwe ve, xwe da bû ber holikê û guhdariya Hisên dikir. Fatê serê xwe hilda, berê xwe da Hisên û got ê:

— Herê tête bîra min, eskerên Brahîm paşa jî bi kumên sor bûn.

Fatê bi bîranîna kumên sor hêj bêtir li ber xwe ket, çavên xwe kir ber xwe; û paşê dergûşa xwe hejand û ji sêwiyê xwe re lorand:

Dergûşa min ji dêr e
Min daye kewê êr e
Ez çi bikim ji vê dergûşê
Dergûşeke bê xêr e
Lorî, lorî dergûş lorî!

Lorî dikim lori naye
Ê sêwî ye kedî nabe
Ê ariya ye aşi nabe
Lorî, lori dergûş lorî!

Mi dest daye hawîrdorê
Mi rebenê li min korê
Celad dike l'dila zorê
Lorî lorî dergûş lorî!

Dergûşa min l'ber tiflk e
Li teniştê yek kitik e
Sêwî tê de hilkêhilk e
Lorî, lorî dergûş lorî!

Ez çi bikim j'vê dergûşê
Dergûşeke bê xêr e.

## LA BERCEUSE DE FATÊ

L'un des genres les moins connus de la littérature populaire kurde est celui de la berceuse (LORÎ, de LORANDIN, bercer). Généralement courtes — trois ou quatre strophes de quatre vers, et chantées sur des airs très simples, les berceuses Kurdes sont le plus souvent improvisées au gré des circonstances. La naïveté de leur inspiration font qu'elles contiennent parfois des images d'une grande beauté. La berceuse de Fatê, pleine de fraicheur et de charme, est un échantillon remarquable de cette sorte de compositions. Elle a été recueillie en 1919 par M. Herekol Azîzan. Nous en donnons, ci-dessous, la traduction précédée d'une courte notice de notre collaborateur sur les circonstances dans lesquelles elle a été recueillie :

«Au cours d'un voyage au Kurdistan, en 1919, le 24 Août, vers midi, nous arrivâmes au village de Tabiye qui se trouve près d'Ayintab, à une étape de la ville. Les paysans ne nous connaissaient pas, pourtant, ils sortirent à notre rencontre et nous conduisirent chez leur chef, puis ils égorgèrent un mouton à notre intention.

Tabiye est un petit village de vingt maisons, dont seize sont kurdes et quatre turques. Les Kurdes, qui appartiennent à la tribu des Atman considèrent les Turcs comme (reiyet) (1) Ces derniers parlent aussi le kurde, mais il est facile de reconnaître à leur type qu'ils ne sont pas de notre race.

Un vieillard, nommé Hisên, nous fit en ces termes l'historique du hâmeau : « Notre village s'appelle Tabiye (tranchée), parcque, lors de la guerre d'Ibrahim pacha d'Egypte, les Turcs y creusèrent des tranchées, dont on voit encore les vestiges — il nous en indiqua l'emplacement de la main. Je me souviens que les Turcs furent battus, comme ils viennent encore de l'être. Les soldats d'Ibrahim Pacha entrèrent dans le village et le pillèrent. A part moi, il y a encore ici une survivante de cette époque, une vieille femme que l'on appelle Fatê. Elle est moins âgée que moi, mais la pauvre est devenue aveugle, tant elle a eu de malheurs. Son fils cadet a été tué à la guerre. Sa belle fille vient de mourir. Elle a quelque peu perdu la raison, et elle se promène dans le village avec son petit-fils orphelin, lui chantant des berceuses.»

Fatê, l'enfant dans les bras. s'était approchée de nous et écoutait parler Hisên. Elle leva la tête, et, se tournant vers lui, elle dit : (Oui, je me souviens, les soldats d'Ibrahim Pacha portaient des bonnets rouges.» L'évocation de ces bonnets rouges raviva le chagrin de la vieille, elle baissa les yeux et se mit à bercer l'orphelin, en chantant:

Mon berceau est en bois,
Je l'ai posé à la chaleur du feu
Que faire de ce berceau,
Ce berceau de malheur?
Dodo, dodo, berceau, dodo!

(1) Les « reiyet », paysans non rattachés à une tribu, forment une classe inférieure dans la société Kurde.

Je chante, il ne dort,
Orphelin ne s'apprivoise,
Qui souffre ne se calme,
Dodo, dodo, berceau, dodo!

Je tâtonne autour de moi,
Pauvre, pauvre aveugle,
Le destin cruel broie les coeurs,
Dodo, dodo, berceau, dodo!

Mon berceau est devant la cheminée,
Un chat est assis à côté,
Et dedans, l'orphelin halète
Dodo, dodo, berceau, dodo!

Que faire de ce berceau,
Ce berceau de malheur?

R. LESCOT

NOTICES SUR LA LITÉRACTURE LES MOEURS ET LES COUTUMES KURDES (1)

14

# MEMÊ ALAN

Ils auraient dû héberger Mem la première nuit, et ne le conduire que le lendemain chez son hôte. Pourtant, le voyageur ayant promis de ne révéler à personne que c'étaient eux qui lui avaient directement indiqué la maison des Celaliyan, ils consentirent à lui en monter le chemin.

Après avoir suivi une longue avenue, Mem arriva devant le palais des Celaliyan. Les portes étaient ouvertes. Il entra dans la cour, où se trouvaient par hasard les trois frères, entourés de leurs domestiques. Ils s'avancèrent à la rencontre de Mem : Tacin l'aida à descendre de cheval, Çeko alla lui préparer un divan, tandis que Gurgîn, le cadet s'occupait de Boz. Les valets rendaient les honneurs. Tout le monde admirait Mem. Ses hôtes l'installèrent sur un somptueux sofa, et l'entourèrent de coussins moelleux.

## EPISODE IV

### LA FAMILLE DE ZÎNA ZÊDAN

Zîn appartenait à la famille des Emirs de Botan, qui portaient le nom de Azîzan. Ils étaient Yezidis et adoraient le dieu Eyzed. La maison princière était divisée en trois branches. La branche régnante était issue de

(1) Voir les articles précédents dans les numéros du Hawar : 1, 2, 3, 4, 5, 6. 7, 8, 9, 10, 11, 12, 23.

Pronav — ez, we, ew, yên min, evê ha, çi, ki, kê, ko, kijan.

Jmarnav — Yek, du sed, heştek, nivyek, çare çar, xeko yeko, pênc bi pênc.

Lêker — Were, dixwar, dê bihata, keti bû, divêt, nivîsandin, xwendi bûn, daket, çikandin

19 — Bêjeyên neguhêrbar. Bêjeyên neguhêrbar ew in ko di qisetê de şikilên xwe ên eslî tucaran naguhêrînin û hergav weke xwe dimînin.

Rengdêr — Gewr, nû, qenc, bilintir, helesor, mezin, spehî, nizim.

Hoker — Holê, îro, hingê, nik, bes, kêm, kû, kengê, niho, no, belê.

Daçek — di, li, ji, di—de, ji—re, der, digel, beri, paşi, piştî.

Gihanek — wek, û, an, lê, ko.

Baneşan — lê, lo, ax, hey, way, ho, ox!

29 — Vekît: vekît tevayiya isûl û qeydeyên nivîsandin û bihevebûna bêjeyan e. Bi gotinên din her bêje vekita wê, yani şikilekî nivîsandina wê î xweser heye. Bi tenê bêjeyên ko bi çend awan têne bilêvkirin bi çend awan ji têne nivîsandin. Herweki: « Bihurîn, borîn. Rih, ri. Reh, ra. Nêzing, nîzik. Şehristan, şaristan. Teva, teba. Bihin, bîn. Birçî, birsî. Nimêj, nivêj ».

Ji milê din vekît ji me re bêjeyên ko biheve dibin û yên ko biheve nabin ji hev vedigerîne û awayê bihevebûna wan şanî me dide.

Qeydeyên vekîtê ji tevayiya gramêrê dertên. Di bihevebûna bêjeyan de qeyda gelemper ew e ko her bêje bi serê xwe tête nivîsandin û bi bêjeyine din ve nabin; ji hin awartan pê ve. Weki niho, di komeka « Ez dibî li nêçîrê bûm » de tu bêje bi yeke dî ve ne bûye, ji ber ko her yeke wan ji birên qisetê texlîteki din e. « ez - pronav, dibi - hoker, li - daçek, nêçir - navdêr, bûm - lêker. » (ê) ya ko bi « nêçîrê » ve bûye tewang e; û tewang hergav bi navdêr û pronavî ve dibin.

## NIQTEŞANÎ

30 — Qiset bi hin nîşandekan ji hev dibe. Ev nîşandek dawî û birên komekê pêş me dikin. Bi danîna van nîşandekan mana qisetê çêtir li hev bi der têt. Ji isûlê danîna nîşandekan re niqteşanî dibêjin. Ji milê din em bi niqteşaniyê, di dema xwendinê de cihên rawes û wêsihê jî dizanin û li gora nîşandekan, cih cih û kêm û zêde disekinin û bihna xwe didin.

31 — Nîşandekên niqteşaniyê ên bingehîn ev in:

| | |
|---|---|
| ( . ) | Niqte |
| ( ? ) | Niqtepirs |
| ( ! ) | Niqtetebang |
| ( : ) | Niqtecot |
| ( ; ) | Niqtebihnok |

Ji van pê ve çend nîşandekên din hene ko em wan kêm caran dixebitînin; û wezîfa wan ji ên jorîn cida û bi awakî din in.

| | |
|---|---|
| ( ) | Kevanek |
| « » | Dunik |
| —, | Xêzek |
| - | Bendik |

Niqte — Niqte paşiya komekê şanî dide. Ji lewre gava komek temam dibe li dawiya wê niqteyek tête danîn: Hêv tariya şevê diedilîne. Bi reşandina avê şewat tête vekuştin. Bedena Diyarbekrê bedeneke kevnare ye. Xwîn bi xwînê naye şiştin.

Niqtepirs — Niqtepirs dikeve paşiya komekên pirsiyariyê. Ji manê pê ve ew jî reng û dengê pirsiyariyê dide qisetê: Genco kengê ji welêt hatiye? Hevind çi dinivîsine? Te çend kew kuştine? Ki ji derincê de ket?

Niqtebang — Niqtebang dikeve ber baneşanan û li paşiya komekên baneşaniyê. Ax! ez çiqas têşim! Binve kezeba min; binve lo lo! Way li min ax ezo! Xwedêo! tu bi rehma xwe kî.

Niqtecot — Gava li ber komekê tiştek tête gotin an hejmartin; niqtecotek dikeve paşiya komekê. Baveki di dema mirina xwe de ji zarowên xwe xwe re got: Zarono! ez ji we re naveki pak dihêlim; qedirê wî bizanin û wî weke xwe hilînin. Mirovê hêja bi sê tiştan hêja ye: mêrani, xebat û comerdî.

Niqtebihnok — Niqtebihnok dikeve navbera wan hevokên ko bi hev re girêdayî ne û mana hev diedilînin û wê dibin serî. Dewlemendî bi hinerê ye, ne bi mal û pereyî ye.

Bihnok — bihnok dikeve navbera wan bêjeyên ko di komekê de dane pey hev û bi gihanekekê ne hatine girêdan. Di vi hali de bihnok, bi awakî cihgirtiyê gihanekê ye. Ji milê din ev nişandek dikare bikeve navbera birên komekê ên kiçik jî. Bi şertê ko bi danîna wê mana komekê neyit guhartin. Temo, Cangir, Hevind û Ferzende brayên hev in. Sor, sipî, kesk û zer rêngên ala me ne. Mirov bi axaftin, nivîsandin û xwendinê ji heywanan tête ferq kirin. Kurên min, hon çire ji ya min nakin û ji ya xelkê dikin. Em bemî, emê herin şerê welêt. Belê, ez jî, ezê bi we re bêm.

32 — Rawes û vêsih. Me goti bû ko nîşandekên niqteşaniyê, di qisetê de cihên rawes û

# NAVÊN

## KURD Û KURDMANC Û CIHÊN KURDISTANÊ

Çima ji me re dibêjin kurmanc? Di zemenê tofana Nûh de, gava keştiya wî li ser çiyayê Cûdî (Cih dî) yanî (çiyakî dî) rûniştiye kurmancan gotiye li cihekî din rûniştiye. Bi erebî jê re gotine (Cûdî). Lê ev navekî kurmancî ye. Ji xwe (Nûh) ji (nih) an (nû) ye. Ji ber ko dinya ji nû ve ava kir. Gava Nûh û hevalê xwe (heştê) peya li ser çiyê ji keştiya xwe bi derketin, li pesara çiyayê Cûdî gundekî nû ava kirin. Jê ra dibêjin (Heştiyan). Ew gund îro ji ava ye.

Piştî ko însan pir bûn û zeman dirêj bû û nijad ji hev derketin û li rûyê zemînê belav bûn; kurd li warê bavê xwe man. Ji ber vê yekê hate gotin (kurd - man - li - cî -).

Di dora zeman û zaravan da (li) winda bû; û ev gotin kete şikilê (kurdmancî) û (kurdmanc); pêşdetir (d) jî ket û bû (kurmanc).

Herwekî navê Nemrûd (Nîmroz) yanî (Nîvroj) e.

Ji xwe bajarê Cûdî (Şernex) e. esilê vê gotinê jî (Şehrê - Nûh) an (Şehrê - nû) ye, kurmancîke xwerû; bi mana (Bajarê Nûh) an (Bajarê nû).

Gelek navên kurd û kurdistanê hene ko bi vî awayî hatine guhartin. Ko Xwedê hez kir ezê pêşdetir hinekên din jî pêş çavên xwendevanên Hawarê bikim. HIŞYAR

---

vêsihê ji şanî me didin. Herçî niqte ne cihê rawesê ne; yani di wan de mirov qederekî disekine. Herçi bihnok û niqtebihnok in cihê vêsihê ne; û di wan de em hindik disekinin. Vêsiha bihnokê ji hemiyan kurtir e.

33— Nişandekên mayin.

Kevanek — Kevanek li pêşî û li paşiya wan pirsan tête danin ko bi sebebekê ketine komekê û heke jê hatine hilanin mana komekê ne kêm dibe, û ne jî dıguhêre. Belayê (wê nexweşiya xedar) ez geleki êşandim. Segmanên me hemiyan (qederê bîst û pênc mêr) li rêlê wer hatine û şergeh girtin.

Şanek — Li şûna kevanekan mirov dikare xêzikan jî bêxe. Belayê — wê nexweşiya xedar — ez gelekî êşandim. Segmanên me hemiyan — qederê bîst û pênc mêr — li rêlê wer hatin û şargeh girtin.

(dûmahîk heye) C. A. BEDIR - XAN

# JIN

## Û BEXTIYARIYA MALÊ

Gelek jin hene; bawer dikin ko rehetî û xweşiya malê bi pere û dewlemendiyê ye. Lê ne we ye. Seadet û bextiyarî ne ji dewlemendan bi tenê re ye. Xincikên belengazan hene ko seadet û bextiyarî, ji qesra dewlemenda çêtir û bêtir, tê de qerar digirin û bi rehetî cih dibin.

Carina seadet sadegî ye û bextiyarî pê rewşen û geş dibe. Sadegiya xwediya malê ew e ko bi xelkê dora xwe re mihirvan û dilovan bibe, piçûkan neêşine, bi mezinan re ji adetê der midarayê neke. Bi van wesfan xwediya malê dikare hejkirina xelkê xwe, çi kiçik, çi mezin, ber bi xwe ve' bikişine û bibe perestiya wan.

Gelek tiştên bêehemiyet hene ko carina jin li ser wan disekinin û bi stûriyê pergara mala xwe xerab dikin. Ji xwe erin her tiştî tevlî hev dike û tamsariyê dixe hêlîna seadetê. Ji jinan re divêt ji mêran bisebirtir hibin û gava mêr dixeyidin ew sebirê bi xwe bidin.

Erin agireke, ji bo vekuştina wî, jê re av divêtin, jê re hênikahî gerek e, ne agirekî din. Ber vê yekê gava mêr germ dibin divêt jin honik bibin û wê germiyê şirgerm bikin.

REWŞEN BEDIR - XAN

# FERHENGOK

HEVOK (m) — Ji her birê komekê re hevok dibêjin. Komek carina ji çend û carina jî ji hevokeke bi tenê tête pê. Di her komekê de herçend lêker hene ewçend jî hevok peyda dibin. Komekine bi yek hevokê: Derew sêwî ye. Baran dibare. Gurgîn çû welêt. Komekine bi çend hevokan: Ez bawer dikim; ko Xwedê heye. (Proposition)

MIJAR (m) — Tiştê ko asasê nivîsandin an axaftinê ye. Mijara Hawarê a bingehîn zmanê kurdmancî û pêşveçûna wî zmani ye. Mijara vê kitêbê şerên kurdistanê ye; yanî tê de qala şerên kurdistanê dikin. (Sujet)

RAWES (m) Halê rawestan û sekinînê. Tiştê destpêkirî qut kirin û sekinîn. Ev der cihê rawesê ye. (Arrêt)

VEKÎT (m) — Awa û şikilê nivîsandina bêjeyan û terzê bihevebûna wan. Vekîta Gurgîn qenc e; yanî gava dinivîsîne xeletan nake û her bêjeyê weke xwe û rast dinivîsîne. Ez vekîta vê bêjeyê nizanim; yanî ez nizanim ev bêje çawan têtê nivîsandin. (Dictée)

VEKÎTANDIN — Ji yekî re tiştek xwendin an gotin û ew tişt jê re dan nivîsandin. Tu ji min re vekîtine ezê binivîsînim. (Dicter)

VÊSIH (m) — Di balekî de mayîn û tê de ji rawesê kêmtir sekinîn. Te di vê vêsihê de dirêj kir. (Pause)

## CHANTS D'AUTOMNE

Après les nombreuses chansons de danse, d'amour ou de guerre, déjà publiées par Hawar, les deux pièces dont nous donnons cette fois-ci la traduction représentent un genre inédit, celui du « païzok », ou « pehîzok », chant d'automne.

A première vue, le « païzok » ne diffère pas sensiblement des autres compositions d'inspiration amoureuse : les thèmes développés (passion malheureuse, séparation, rendez-vous nocturnes) sont identiques, ainsi que la forme adoptée (dialogue entre les deux amants). C'est le cadre naturel dans lequel il se situe qui lui donne une tonalité particulière. Chaque strophe débute par un bref rappel du paysage d'automne dont la mélancolie inspire au poëte de sombres réflexions. Le brouillard voile les montagnes, les torrents grossis par les premières pluies roulent leurs eaux tumultueuses, la neige couvre déjà les plus hauts sommets. L'hiver approche, et les tentes nomades quittent les pâturages d'été pour regagner la plaine. Jusque là groupées dans les campements de l'alpe, elles vont s'égailler dans le bas-pays. Finie l'insouciance des beaux jours; finies aussi les amourettes à peine ébauchées, c'est le moment des adieux, et l'on regrette les aveux que l'on n'a osé faire.

Les deux chansons qui forment l'objet de cet article ont été recueillies au Botan. La première est de la région d'Ereh. Elle porte seule le titre de « païzok », la seconde nous ayant été donnée pour un « paşlavjok » genre analogue au « lavjok », chanson d'amour; en réalité, ces deux appellations différentes répondent, dans le cas qui nous intéresse, à une simple dissemblance de forme, et non de fond.

### PEHÎZOK

Îro pehîz e, mi ne kiriye kar û barê Zivistanê
Serê bilind oxilme ne, deştikên jêri dixwazin
[ reşîşê baranê
Xwezîka ez biviyama haval û hogirê bejnika
[ bilind
Ji Tirbikê - şêxa hata bigihama Diriyanê

Îro pehîz e, mi ne kiriye kar û barê
[ pîrekanûnê
Serê bilind oxilme ne, taviya xwe avêtine
[kepiyê Dêrebûnê
Kuro kulmalo! kulmal ! dê-w-bavo, te
[ çima dey ne kir par warê Havînê?
Îro pehîz e; hatiye wextê xatir û malbelav-
[ bînê

Ezê nazdar im, ez nizam naziyê xwe li kê kim
Ezê li serê çiyayê bilind bisekinim wey guriya
[ bizûrim, destê xwe raberî Xwedê kim
Evî teres dê- w -bavê mêra darek li zendê
[ zêrbazin daye
Ez nizanim qerepûşiya giran ji kê re çêkim

Lawikê mi hatî bî ji welatê jorî, min diviya
[ ez bi mirad û meqsed rêkim
Dilê min kul e, kovanî wa tê da
Birekî siwarê mala bavê min derketin; reşmê
[ xwe xwîl kirine li ser cezmê da
Xwezîka ez biviyama malxwê ewê malê ya
[ çavreşa min biskbitêla min û kevanî
[ li malê da

Ez li xemlika vê robarê fekirîme hemî sipîn-
[ dar û şiv in
Serê xwe dihejînin ji binê xwe dilivin
Min heyfik û sêsed mixabin e, kurikê bi gulî
[ bimire, jinika ciwan a nestêle, li berê
[ kotiyê çepel, mêrê kal binivin

Hawarî li mala daketiye di mîr û di axan e,
[ di taxim û di alan e
Memikê ez bibama xulam destê delêl da serê
[ sûka; ew xizan in giranbeha ne

Ezê li vî bajarî fekirîme, bajaro li min mezin e
Sirha wî bilind e, dergehê wî hesin e
Heger tu pirsa kilîta cihtê memika dikî qifil
[ û mifte di destê min e

### PAŞLAVJOK

Îro pehîz e min nizanî
Ezê li Herekolê fekirîme çarkokeke spî li serê
[ xwe wer anî
Bi Xwedê kî belekên çavên te reş in; kilê
| sibhanî jê re meke bar û giranî.

Ez nizanim ezê xema çi jê kim
Ezê ser berê govendê bisekinim kefyoka xwe
[ awa awa çêkim
Selam û kelamê xelkê dûr hatine ez nizanim
[ çi l'şûnê rêkim.

Ezê li Talê fekirîme miqabilî Azê!ê
Ser berê govendê sekinîme miqabilî deştika
[ Xesxêrê
Ezê xulamiyê ji wê bejn û balê re bikim
Ya sibehî êvara disekine ser bin bêrê

Ezê li Herekolê fekirîme va keviya
Qalanê memikên xwe dane bedalî her di rûya
Heke tu pirsa zerî esmera ji min dikî
Xwe berde warê Kepirê nav malê Qocebegiya

Ezê li Herekolê fekirîme kevyo li min
[ heraftin
Du şêr li ber deryê mala bavê min hene; bi
[ tu terzî nayên axaftin
Min divê ez biçim tewafa xala gerdenê, gu-
[ har û beniya ez hingaftim

Ezê li Herekolê fekirîme, kevyo li min bûne
[ piçî
Cobarên avê ji bin herikîn xwe berdane ser
[ kara kiçî
Ez nizanim ne ramûsana nîvê şevê xweş-
[ tir e, ne ya dora çiçî

Serê min têşîhî dilê min di jan da
Koremijê xwe avête serê Herekolê
Şêx Miheme Girê Nîskîn miqabil cewab da
Xwezîka ji xêra Xwedê ra ez bibiyama haval
[ û hogirê bejna bilind
Ji Bena Zînî heta Şargiha kewê lal da

Pehîz e, dilikê min ketiye ber kesera
Gurebakî rabiye lêdaye qatol û kelemperê
Çiyayê jorî qulibandin şkeftên Solkera
Heçî dostik û yarikê bi kêfa xwe tîne be
Bila medhê xwe nedî li tu dera

Îro pehîz e, mi ne kiriye kar û barê Zivistanê
Koçerên Rewandizê bar kirine; berê xwe
[ dane warkoza ji zozana
Xwezîka ez bibyama haval û hogirê bejna
[ bilind
Di sê şevên kanûnê û sê rojên gulanê

Dilê min li ber casûsê
Bayî lêdaye qatol û kelemperê çiyayê jorîn
[ qulibandine kambaxa gola Qatosê
Dostik û yarikê dinê alemê diçûne zozana,
[ ser avên cemidî
Ya min bi tinê maye kambaxa karoxa we-
[ latê Kilîsê

## Pehîzok

LA JEUNE FILLE :

Voici l'automne, et je ne suis pas prête pour l'hiver.
Les hauts sommets sont couverts de nuages, les basses plaines demandent à être arrosées par la pluie.
Que ne puis-je être la compagne de mon ami à la taille svelte,
Depuis Terbekê Chékha, jusqu'à Deriyan.

Voici l'automne, et je ne suis pas prête pour l'hiver.
Les cimes sont couvertes, les nuages masquent le pic de Déreboun
Ami, pauvre ami, malheureux ami, pourquoi n'as-tu rien dit, l'an dernier, durant le campement d'été ?
Aujourd'hui, l'automne est venu, voici le moment des adieux, les tentes vont se disperser.
Je suis choyée, mais ne sais plus pour qui faire la coquette,
Je reste debout au sommet de la montagne, je hurle comme une louve, je tends les mains vers Dieu.
Le méchant a frappé du bâton mes poignets ornés de bracelets d'or (1),
Je ne sais plus pour qui nouer ce lourd turban noir.

Si mon bien aimé était venu du haut pays, il me faudrait lui envoyer un heureux message.
Mon coeur est triste, il est plein de mélancolie.
Des cavaliers de la maison de mon père sont sortis en groupe ; ils laissent flotter les rênes jusque sur leurs bottes

LE JEUNE HOMME :

Ah ! Si j'étais le maître de cette maison, la maison de ma belle aux yeux noires, aux boucles fines, la bonne ménagère !

J'admire la grâce de ce vallon ; les peupliers et leurs rejets agitent leurs cimes ; les troncs frémissent.
Hélas ! Hélas ! Que meurent les garçons aux belles boucles, ! Les jolies femmes ne sont pas pour eux, elles dorment contre la poitrine de vieux, dégoutants et chassieux, de vieillards chenus.

Le cri d'alarme a retenti dans les maisons.
Il y a deux émirs et deux aghas de clans différents (2).
Mameké, que ne suis-je un esclave mis en vente par le courtier, à l'entrée du souk : ces «khezan» (3) coûtent cher !

Je regarde cette ville : la ville est grande à mes yeux :
Ses murailles sont hautes et son poche de fer,
Si tu demandes où est la clef des seins jumeaux : serrure et clef sont dans ma main.

## PAŞLAVJOK

LE JEUNE HOMME :

Voici l'automne, et je ne m'en doutais pas.

---

(1) Ce vers doit être pris au sens figuré : la jeune fille se plaint non pas de la brutalité de son amoureux, mais de la manière dont il l'a abondonnée.

(2) Ce vers renferme sans doute une allusion à une guerre de tribus.

(3) Le «khezan» est un bijou d'or, en forme de fleur, que les femmes portent à la narine droite. Le jeune homme demande à être vendu comme esclave, de façon à pouvoir en offrir un à sa bien aimée avec l'argent qu'il pourra ainsi se procurer.

Je contemple le Harakol (1) il a coiffé de travers son blanc turban « de nuages ».
Pour l'amour de Dieu, tes yeux sont assez noirs, ne les surcharge pas de kohol.

Que faire avec mon chagrin ?
Je suis à la tête de la file des danseurs, j'agite mon foulard, de ci, de là (2).
Le salut et le message de la bien-aimée lointaine sont parvenus jusqu'à moi, qu'envoyer en échange ?

Je regarde vers Talé, vis à vis d'Azér,
Je suis à la tête de la file des danseurs, face à la plaine de Khaskhér (3).
Je suis l'esclave de ma belle à la taille fine..
Du matin au soir, elle est occupée à traire le bétail.

Je contemple le Harakol et ses pentes que la neige ne recouvre pas encore entièrement (4).
Si tu me demandes où se trouvent les belles brunes,
Va au camp de Kaper, parmi les tentes des Qotchebegiya (5).

LA JEUNE FILLE :
Je contemple le Harakol, une avalanche s'est abattue sur moi.
Deux lions se tiennent à la porte de chez mon père on ne peut leur dire le moindre mot (6).

LE JEUNE HOMME :
Je voulais aller en pèlerinage vers le grain de beauté que tu as sur la gorge, tu m'as frappé de tes boucles d'oreilles (7).

Je contemple le Harakol : la neige le recouvre déjà presque entièrement.
Plus bas, les torrents commencent à couler., ils innondent la mine de Ketchi.
Je ne sais lequel vaut mieux du baiser de minuit, ou de celui que l'on prend autour des seins.

(1) Le Harakol est la plus haute montagne du Botan.

(2) Les danses kurdes s'exécutent, pour la plupart, en groupe. Les danseurs se placent côte à côte sur une même ligne, se tenant par le bras ou par la taille. Le chef de file agite un foulard de la main droite.

(3) Talé, Azer, Khaskhêr : noms de lieu du Botan.

(4) Le terme Kurde « kevî » désigne littéralement une tache noire formée par de la terre ou par un rocher au flanc d'une montagne recouverte de neige dans sa plus grande partie.

(5) Les Qotchebegîya, tribu nomade botanienne plus connue sous le nom de Batûyan, passent l'été aux zozans de Kaper. Le second vers de la strophe est intraduisible.

(6) Les deux lions sont les deux frères de la jeune fille, auxquels celle-ci ne peut persuader de favoriser ses rendez-vous amoureux.

(7) Et ces boucles sont assez lourdes pour faire mal à celui qu'elle frappent.

Ma tête me fait mal et mon coeur souffre.
Un brouillard épais cache le sommet du Harakol, et vis à vis de lui, Chaykh Mehamé Geré Niskin

Que ne puis-je accompagner mon amie à la taille svelte depuis Bena Zini jusqu'au fortin de la Perdrix Muette.

Voici l'automne, j'ai le coeur plein de mélancolie.
Le vent du Nord s'est levé, il souffle sur les chardons de la haute montagne et les emporte jusqu'aux cavernes de Solkera.
Qui n'a d'amie à son plaisir.
Qu'il ne se vante en aucun lieu.

Voici l'automne, je ne suis pas prêt pour l'hiver.
Les nomades de Ravandouz ont levé le camp, ils abandonnent l'alpe pour regagner leurs installations d'hiver.
Que ne puis-je passer en compagnie de ma bien-aimée à la taille svelte,
Les trois nuits de Février et les trois jours de Mai (1).

Mon coeur est livré aux espions.
Le vent souffle sur les chardons de la haute montagne, il les emporte jusqu'au maudit lac de Qatosé.
Quand les amies, les bien-aimées des autres rejoignaient les pâturages d'été, au bord des eaux glacées,
Seule la mienne est restée dans cet ignoble Karokh de Walaté Kelisé (2).

R. LESCOT

NOTICES SUR LA LITTÉRATURE LES MOEURS ET LES COUTUMES KURDES

15

# MEMÊ ALAN

Apercevant sa bien-aimée ; Mem poussa un cri; il se retint juste à temps ne pas sauter par la fenêtre et aller la rejoindre. Au bruit qu'il fit, Zîn leva les yeux ; elle le reconnut et chancela sur son cheval.

Çeko qui avait tout vu comprit la triste vérité. Il fut sur le point de s'élancer contre Mem pour le tuer. Il se contint, pourtant, et ne manifesta sa présence qu'en

(1) Les trois nuits et les trois jours les plus longs de l'année.

(2) Karokh est un village de la plaine de Welaté Kelisé (Botan).

toussant légèrement . Mem comprit qu'il n'était pas seul et se retira , plein de confusion . Zin , se doutant de quleque chose , reprit tant bien que mal une contenance indifférente et s'éloigna rapidement avec sa suite .

Tacîn attendait impatiemment à son poste ; il fut très étonné de voir que toutes les femmes étaient passées sans que Çeko eût donné le signal convenu . Un doute terrible se fit jour dans son esprit : il pensa que la bien-aimée de Mem ne pouvait être que sa propre femme , Siti , et que son frère n'avait pas eu le courage de l'en avertir . Il entendit Çeko qui criait du haut de l'escalier :

— Viens me rejoindre , Tacîn . Toutes les femmes de la ville ont défilé devant notre palais ; maintenant , je sais qui Mem est venu chercher . Nous avons tramé notre propre perte .

L'appréhension de Tacîn devint une certitude :

— Voici maitenant , songea-t-il , que Çeko me confirme la mauvaise nouvelle .

Il répondit :

— Frère , tu viens de me porter un coup terrible , je sens mes jambes se dérober sous moi . Mais , qu'importe , nous avons engagé notre parole , puisque c'est Siti que désire Mem , faites vite , toi et Gurgin . Qu'elle revête un costume de noces , et conduisez-la à notre hôte ; accompagnez-les jusqu'à la sortie de la ville , avec les plus grands honneurs , que l'on tire des salves , et qu'il s'en aillent au loin , tous les deux ..

Çeko perdit patience et coupa la parole à Tacîn

— Tacîn , tu es mon aîné , tu me tiens lieu de père , puissé-je me sacrifier pour toi . Ce n'est pas Siti aux yeux noirs qu'a frappée le mauvais sort : j'ai tout vu de ma cachette , il ne s'agit que de Zin .

Tacin ne sut s'il devait se réjouir ou s'attrister : il craignait que son cadet n'eût pas le courage de tenir sa parole .

## EPISODE VI

## LA PAIX APRES L'ORAGE

Les deux fréres se regardaient en silence, et Çeko se disait :

— Nous pensions que la bien-aimée de Mem était la fille de quelque notable. Nous aurions alors détrui la ville et massacré les gens pour le satisfaire . Mais je ne puis me couvrir de honte en lui abandonnant Zin .

Il songeait qu'il lui faudrait se battre avec Tacîn , le tuer , et qu'ainsi , Mem quitterait le pays et renoncerait à Zin . S'il succombait dans la rencontre , il n'aurait du moins pas à assister aux noces de sa fiancée et de son rival .

Voyant que son frère ainé continuait à l'observer sans rien dire , Çeko déclara d'un ton arrogant :

—Chaque année , nous tirons les parts de butin au sort . A mon avis , c'est là une coutume stupide . Cette fois-ci , je prendrai tout , et l'an prochain , nous verons .

— Quand nous sommes-nous trouvés en désaccord pour des questions d'argent ? répondit Tacîn , prend tout ce que tu veux . Nous devons , avant toute chose , régler l'affaire de notre hôte .

— Qu'ai-je à voir avec notre hôte ? Je sens la colère monter en moi . Si je descends cet escalier , je ne remettrai pas mon sabre au fourreau avant de t'avoir tranché la tête .

( à suivre )

D. A. BÉDIR-KHAN

---

DI RADYOWÊ DE

## WEŞINEKÊN KURDI

BÊRÛT : RADYOWA ROHELATÊ

Pêlên kurt ( 37, 34 ) Pêlên navîn ( 293, 50 )

Radyowa Rohelat li heftê du caran rojên În û Çarşembê , piştî nîvro , ji saet pêncan heta pênc û nîvan bi kurdmancî diweşîne .

IRAQ : RADYOWA BEẌDAYÊ

Pêlên kurt : ( 42 ) mêtr . Hero piştî nîvro ji saet çar û çil û pênc deqîqan heta saet pêncan bi kurdî diweşîne .


## Kiryariya Hawarê

| | | | |
|---|---|---|---|
| Salî | 500 | Qirûşên | Sûrî |
| Heştmehî | 300 | Qirûşên | Sûrî |
| Çarmehî | 150 | Qirûşên | Sûrî |

Xwedî û gerînendeyê berpirsiyar : Mir Celadet Alî Bedir-Xan . Şam—Sûriye

Directeur Propriétaire : Emir Djéladet Aali Bedir-Khan. Damas—Syrie

# Kitêbxana Hawarê

Hejmar:

1 — Rêzana Elfabiya Kurdî C. A. Bedir-Xan.
2 — Rupelnine Elfabê C. A. Bedir-Xan.
3 — Dilê Kurên Min Dr. K. A. Bedir-Xan.
4 — Biyişa Pêxember. Bi Kurdiya dumilî, bi dibaca C. A. Bedir-Xan
5 — Nivêjên Êzediyan bi dibaca C. A. Bedir-Xan
6 — Mektûb ji Mistefa Kemal paşê re C. A. Bedir-Xan
7 — Mesela Kurdistanê Bazil Nikitin
8 — Ji mesela Kurdistanê C. A. Bedir-Xan
9 — Elfabeya Kurdî Dr. K. A. Bedir-Xan
10— Xwendina Kurdî Dr. K. A. Bedir-Xan
11— Elfabeya min Dr. K. A. Bedir-Xan
12— Dersên Şerîetê Dr. K. A. Bedir-Xan
13— Çarînên Xeyam Dr. K. A. Bedir-Xan
14— Proverbes Kurdes. Medhelokên Kurdî. Lucy Paule Margueritte û Emîr. K. A. Bedir-Xan Paris - 1937
15— Le roi du Kurdistan. Qralê Kurdistanê. Emir K. A. Bedir-Xan û Adolphe de Falgerolle. Paris - 1937
16— Der Adler von Kurdistan. Eyloyê Kurdistanê. Prinz K. A Bedir-Xan û Herbert Örtel Berlin - 1937
17— Der Schnee Des Lichtes. Berfa Ronahiyê. Şihrên Kurdî Prinz. K. A. Bedir-Xan û Dr. Curt Wunderlich Berlin - 1937

# Kiryariya Hawarê

| | | | |
|---|---|---|---|
| Salî | 500 | Qirûşên | Sûrî |
| Heştmehî | 300 | Qirûşên | Sûrî |
| Çarmehî | 150 | Qirûşên | Sûrî |

Xwedî û gerînendeyê berpirsiyar: Mîr Celadet Alî Bedir-Xan. Şam—Sûriye

Directeur Propriétaire: Emir Djéladet Aali Bedir-Khan. Damas—Syrie

SAL 9
HEJMAR 29

SÊŞEMB
10 HIZÊRAN 1941

# HAWAR

ANNEE 9
NUMERO 29

MARDI
10 JUIN 1941

KOVARA KURDÎ ✶ REVUE KURDE

## TÊXISTIYÊN VÊ HEJMARÊ



## BIRÊ FRENSIZÎ



ŞAM—1941
ÇAPXANA SEBATÊ

SAL 9
HEJMAR 29

SÊŞEMB
10 HIZÊRAN 1941

# HAWAR

ANNEE 9
NUMERO 29

MRADI
10 JUIN 1941

KOVARA KURDÎ ✶ REVUE KURDE

## TEFSÎRA QURANÊ

62 - Ji mirovên ko hema bi dev bawer kirine û ji yên ko bûne cuhî, file an sabiî, heçî ji dil û can baweriya xwe bi Xwedê û bi roja piştdawiyê tînin û qenciyê dikin, kerema Mîrê Mirazan digehe wan û ji bo wan tirsa ezêb nî ne û ew xemgîr na bin . .

63 - Dîsa bînin bîra xwe.... Hon li nik me sondxwariyên Mûsa û kitêba wî bûn, me çiyayê Tûrê di ser we re da sekinandin; ew kitêba ko me daye we bi rastî û dilpakî ji xwe re bibin û hikmên di wê her car bînin bîra xwe û pê emel bikin heta ko hon bigehin riya rastiyê.

64 - Di pişt re we rûyê xwe ji rastiyê zivirand; heke ji kerem û rehma Xwedê ne biwa; we dê xisar bidiya.

65 - Hon halê mirovên ko di roja şemiyê de bextereşî kirine û dest ji masîvaniyê ne kişandin dizanin. Me ji wan re got: Bibin meymûn û ew rezîl û şerpeze bûne.

66 - Me ev tişt seba ibretê ji bo haziran û çêliyên di wan da qewimandin û me pê şîret li bawermendan kir.

67 - Gava Mûsa ji miletê xwe re got: Xwedê bi şerjêkirina çêlekekê ji we re emir kiriye, wan got: Ma tu henekê xwe bi me dikî? Mûsa got: Xwedê min jê bisitirîne, yê ko henekê xwe bi bawermendan dike, dibe ji xelkên gunehkar û nezan.

68 - Qewmê Mûsa jê re got: Ji Xudayê di xwe bipirse, bila ji kerema xwe ji me re bide zanîn ew çi texlît çêlek be? Mûsa got: Ew ne pîr be, ne jî parone be, lê noginek be; divê hon tiştê ko ji we re hate emir kirin bi cih bînin.

69 - Dîsa miletê wî jê re got; ji Xudanê di xwe bipirse, bila ji kerema xwe ji me re rengê wê çêlekê bide zanin. Mûsa ji wan re got: Xwedê dibêje, rengê wê zerê girtî be heta ko yên ko lê fedkirin dilxweş bibin.

70 - Careke din miletê wî jê re got: Ji Xudayê xwe bipirse, herwekî çêlek weke hev in; ji kerema xwe çilobûna wê çêlekê bila bi me xweş bide seh kirin, heta ko em bi destûra wî bigehin riya rastiyê.

71 - Mûsa ji wan re got; Xwedê dibêje, çêlekek be; ya ko tu cara ne ketiye cot û av ne kişandiye; û çêlekeke bê eyb û qisûr û saxelem be. Miletê wî jê re got: Niho te em gihandin rastiyê û dest bi şerjêkirina çêlekê kirin, lê hindik ma bû wan dev jê berdaya; û tirs kete dilê wan ji ber ko wan pê zor dane pêxemberê xwe.

72 - Dîsa bînin bîra xwe.... We Amil kuşt û li ser qatilê wî bi hev ne kir, Xwedê tiştine ko hon vedişêrin eşkere dike.

73 - Û me got: ke bi lebatekî vê çêleka ko we şerjêkirî, li cendekê wê bidin... herwekî Xwedê ev cendek bi vî awayî vejand, wisa jî di roja piştdawiyê de miriyan dê vejîne. Xuda ayetên xwe şanî we dide, ta ko hon bi mezinahiya wî bîrewer bibin.

73 - Gava we ew tişt dît, dilê we hişk bû, weke kevirekî û hêj hişktir; lê binêrin û bîrewer bin, kevirin hene ko ji wan çem hiltên û hinên din diqelişin û ji wan av dertê û avin hene

ko ji tirsa Xwedê, ji çiyayan ber bi jêr ve datên; Xwedê ji emelê we ne bêhay e.

75 - Ma hon çawan dixwazin ko cuhî bi we bawer bin? Birekî wan, gotinên Xwedê bihîstin, tê gehiştin û paşê mana pirsên Xwedê qesdane gnhartin.

76 - Dîsa bînin bîra xwe... Gava ew rastî bawermendan tên dibêjin; [redacted]: Me baweriya xwe aniye û gava ew û cuhî, di nav hev de dimînin, ên minafiq ji ên din re dibêjn: Ma hon çawan dikarin veşartiyên kitêbên xwe yên ko pêxemberîtiya Mihemed û rastiya dînê wî, nîşa me dike, ji misilmanan re bidin zanîn, ma hon ni zanin ko ew gotina we, li nik Xwedê, ji xwe re dikin hicet.

77- Ma ew ni zanin û seh nakin ko rastiya tiştên ko ew vedişêrin an eşkere dikin, Xwedê pê dizane.

78 - Hinên wan cuhiyan nezan in, ne kitêb xwendine, ne jî mana wê seh kirine, bi gotina zanayên di xwe qail bûne, ew ji xwe re hema dibêjin.

79 - Xwelî li serê wan be... Yên ko kitêba xwarkirî bi destê xwe dinivisînin piştre dibêjin ew ji nik Xwedê ye, kitêba wî ye û pê tiştine erzan dikirin.. Xwelî li serê wan be... Yên ko bi destê xwe ew nivisandine... Xwelî li serê wan be yên ko ew kitêba xwarbûyî firotine û pê kar kirine.

80 - Û ew dibêjin: Ji bilî çend rojên hêjmartî, agir na gire me; ji wan re bêje; Heke Xwedê li ser vî tiştî bext da we, Xuda bextê xwe xira nake.

An ne, hon tiştine ko pê nizanin didin bal Xwedê ve?

81 - Lêbelê, yên ko gunehkar bûne û ji gunehên wan dora wan hatiye girtin, ehlê dojehê ne û tê de her wê bimînin.

82 - Yên ko baweriya xwe anîne û tiştine qenc kirine, ew ehlê bihuştê ne û tê de her wê bimînin.

83 - Dîsa bînin bîra xwe... Lawên Israîl ji me re sond xwari bûn ko ji Xwedê pê ve ibadeta tu kesî ne kin; arîkariya dê û bav û mirovên di xwe û sêwî û belengazan bikin û qedrê di wan bigirin; dilê xelkê xweş bikin; rabin nimêjê û zekatê bidin. Paşê, ji we, ji çendekan pê ve, we hemî bextê xwe reş kir; hon bêbext û serkeş in.

84 - Dîsa bînin bîra xwe... We ji me re sond xwari bû, ko hon hev û du ne kujin, hev û du ji welatê xwe ne kin der. Hon bi xwe şahidên vê sondê ne.

85 - Gelo cuhîno.. Hon paşî vê sondê radibin, xwîna hev direjînin, birekî mirovên di xwe ji welatê wan dertêxin; destê hev digirin zor û zilmê li wan dikin û heke çendekî wan têne girtin û hêsîrên we dibin ji bo azad kirina wan hon ji wan peran distînin, derêxistina wan ji mala wan, ji we re heram bû bû; hon bi çend hikmên Tewratê baweriya xwe tînin û bi çend hikmên di wê kafir dibin.

Yên ko ji we tiştine welê dikin, bila xweş bizanin, cezayê wan di dinyayê de perişanî û axretê de ezabekî giran e. Xwedê ji emelên we ne bêhay e.

86 - Yên ko ji xwe re jiyîna dinyayê ji ya axiretê çêtir digirin, ezabê wan sivik nabe û ji wan re tu arîkarî naye kirin.

87 - Me ji Mûsa re Tewrat da û paş wê me pey hev pêxemberên din şandin û me ji Îsayê kurê Meryemê re mûcize dan û me Îsa bi rûhê miqedes xurt kir; lê her cara ko ji we re pêxemberek hat û emrên di wî ne li gora daxwaza we bû we ew ne eciband, we li ber wan nefsmezinî kir, we gotina hinan şkênand û pirsên wan xistin erdê û we hinên din jî kuştin.

88 - Cuhiyan got; Dilê me dadayîne, gotinên te nakevin serê di me. No.. Ya rast ev e ko Xwedê seba kufrê wan, lanet li wan kiriye û ew ji piyarî û arîkariya xwe dûr xistiye, lê ew bîr nabin, bi tenê çendekên wan baweriya xwe anîne

89 - Ji aliyê Xwedê ve, ji wan re kitêbek dahat; herçend jî wê kitêbê hikmê kitêba wan tesdîq dikir, ew pê bawer ne bûne; lêbelê ew berê bi kitêba xwe li ser kafiran hêvîdarê arîkariya Xwedê û nisreta wî dibûn; û gava cenabê Mihemed hat û herçend jî wan ji mêj ve, ji kitêba xwe Tewratê hatina wî seh kiri bûn, wan ew inkar kir; laneta Xwedê li ser kafiran e.

# LAVIJÊN MÎR MIHEME

Li gora bendeke kovara « El mecelet el betrîrqiye el siryaniye » Mîr Miheme heta 1740î jî hikim dikir. Beriya niho bi du sed salî.

Mîr Miheme di nav mîrên Botan de ji şerên xwe hêtir bi nêçîr û nêçîrvaniya xwe, bi minasebetên xwe bi perî û keçperiyan bi nav û deng e.

Me beriya niho jî di Hawarê de qala mîr Miheme kiriye.

Di hejmara Hawarê a 25 an û di notên şihra « Bêriya Botan » de bi hênceta Efno û Hejale, me biserhatiya wî bi keçperiyê û mirina wî bi nifirên periya xwe goti bûn. Jû pê ve di wê hejmarê de me Lavija ko Mifiryan Şemûn ji Mîr re goti bû belav kir.

Di hejmara 26 an de çîrokek bi navê « Ehmedê Zeydan » heye. Di wê çîrokê de qala yekî dikin ko zavayê mîrê cinan e. Ew, mîr Miheme bi xwe ye. Ji xwe mîr di dawiya çîrokê de mikur têt û ji Ehmedê Zeydan re dibêjit: « Ya Ehmedê Zeydan, wê rojê li ser text, di rex kurê mîrê cinan de rûniştî ez bi xwe bûm. Bi eniya Mîr go ne ji min bana wê rojê te bikuştina, bikirana piçk û parî ».

Me dil heye di vê bendê de çend lavijên Mîr Miheme belav bikin. Gava em lavijên Mîr Miheme dibêjin; du texlît lavij têne bîrê. Lavija ko Mifiryan ji Mîr re goti bû û lavijên ko li ser Mîr û nêriyên wî hatine gotin.

Me lavija Mifiryan di hejmara Hawarê a 25 an de belav kiri bû [1]. Emê îro qala lavijên din bikin. Lavijên ko bi ser Mîr bi xwe, bi ser nêçîrvaniya wî û bi ser nêriyên wî, Efno û Hejale de hatine gotin.

Ji xwe ji fesane û çîrçîrokên cihê Botan, gelekê wan bi aliyê Mihemed begî ve didin.

Di destên me de sê lavijên Mîr Miheme hene. Di didowên pêşîn de qala kuştina Efno û Hejale dikin. Bêdiro, Mîr ev her du nêrî ji bo şû ndiyariya Mîrê Amediyê kuşti bûn. Herwekî di hejmara bîst û pêncan de me dûr û dirêj da bû zanîn.

—1—

Ev lavîj Hacî Remezanê kerî gotiye:

Dilê min evdala Xwedê li ber keminê.
Devçêra nêribelê min zozanê jorî bî.
Avexwarina wî li ser kehniya Şkijinê.
Ji yeqîna dilê min ew e, Mihemed heg şêxê [nêçîrvana namînê.
Ji lewmanî Efino ma bî li Ferasînê.

Qeyntarê kul û xema hi rê ketin; şahî bi rê [va gihayê.
Ez dinêrim hewalê bilind; berfika sipî pala [xwe dayê.
Ji yeqîna dilê min ew e, Mihemed beg şêxê [nêçîrvana namînê.
Ji lewmanî elamet radibin dinyayê.
Dinyayê xerabê, ji tu kesî re ne mayê.

Min îro ji hisabdara pirsî bî, çirî çi çûne ci [mane?
Çiriya ewil xelas bîne; ya paşî sê şêv û sê [ro jê mane.
Ji yeqîna dilê min ew e, Mihemed beg şêxê [nêçîrvana namîne.
Ji lewmanî li serê hewalê bilind govenda [nêriyan e.
Ezê pîr bim, dilê xerab qet pîr nabe.

Nêriyo, xerabo, te li vê rêdînê, li vê dimaxê.
Devçêra nêribelê mi zozanê jorî bî.
Avexwarina wî li ser kehniya vê Şaxê.
Ji yeqîna dilê min ew e, Mihemed beg şêxê [nêçîrvana namînê.
Ji lewmanî Efino li serê zozanê jori pişta [xwe da kendala axê.

Hawarek li geliya qewimî bî, ezê nizanim [çi hewar e.
Dengê tifekekê li Mihemed begî xweş tê.
Ez nizanim, ne şeşxane, ne berwec, ne [helqedar e?
Ji yeqîna dilê min ew e, Efino kuştin;
Hejale bahê giska bi çar derha birîndar e.

Ezê li serê bilind difekirim.
Hemî li min bîne sewgurî.
Qeyntarê kul û xema hati bin; li ser dilikî [kul diêwirî.
Ez rebenê Xwedê xizmeta tu mir û tu padî- [şahê mezin nakim.
Ji xêr yê şahik û xûnkar mazûl kiri.

---

[1] Me hingê wehid da bû xwendevanên xwe ko dîrokiya wê lavijê ji wan re bidin zanîn.

Der heqê vê lavijê riwayet têvel in. Kovara « El mecelet el betrîrqiye el siryaniye » di hejmara xwe a şeşan, sala 1939an heyvên Kanûna paşîn û Sibatê de dibêje:

«Basilyos, Şemûnê didowan, Mifiryanê Tora Abdîn gelekî xudan teqwa û dîyanetperwer bû. Li Bamiinminê cem Evdal axa xulamekî siryanî hebû. Wî xulamî dixwest dotmama xwe bike. Ji ber ko di şerîeta Mesîh de jê re cewaz nîne; Mifiryan mehra wan ne dibirî. Xulam xwe avête bextê jinaxa xwe. Ewê ji gote axê. Axê kir ne kir Mifiryan bi ziwaca xulamê siryanî û dotmama wî qail ne bû. Evdal axa lê hate xezebê û Mifiryan rêkir cem Mihemed begê bexti, Mîrê Ciziré; da ko mîr wî ceza bike û bikuje. Mifiryan çû Cizîrê û ket hafa Mîr. Bi emrê Mîr jê re kasek jehir dan. Mifiryan bi destê xwe xaçek li kasê resimand û jehir vexwar; tu tişt pê ne hat. Mîr lê ecêbmayî ma, banî xulam kir û jê pirsî heke di kasê de jehir hebû. Xulam go, belê. Av di kasikê wer dan û dane xulam. Xulam di roja xwe de emirê Xwedê kir.

Mîr careke din Mifiryan anî cem xwe û ji boyî ceribandinê jê xwest ko jê re bistirine û bireqise. Mifiryan ne reqisî lê ji Mîr re Lavija bi nav û deng bi zmanê kurdmancî stirand da ko Mîrê kurdziman seh bike. Di lavijê de qala roja eresatê û ceza û ezabê minafiqan dikin. Mîr û herçî berdevkên dora wî ne, Lavij gelek ecebandin û pir kêfa wan ji Mifiryan re hat. Mîr Mifiryan xelat kir û bi qencî û xweşî vegerand gundê wî ».

Eve riwayeta kovara siryanî. Li gora riwayeteke din Mîr bi xwe ji Mifiryan xwest ko jê re bistirîne; lê bi şertê ko qala şer û dilan neke.

—2—

Ev lavij Hacî Cindiyê erihî gotiye:

Nêriyo te mala xwe ê xirabo, te li vî devî, [ li vê dimaxê.
Sihrên Hincê xirab kirine, berê xwe dane [ geliyê Şaxê.
Xelîtê Mehmed begê Mîrê Bihta, bi zêr û zîv in;
Şeraba xwe berdane ber kemaxê,

Ezê tu çepera naĥebînim; ji xêna Çepera [ Stûnê, raserî Dirba-Şikêr e.
Mehmed beg Mîrê Bihta siwar biye; birekî [ xulam û xizmetkar, wey Şeroyê serxanisî [ Resûlê Finikê wên vê ra.
Dibêjin emê Efîno bikujî, serê wî rêkî ji [ xanê Xwê ra.
Postê wî rêkî, ji Mîrê Amediyê ra.
Laşê wî rêki, şîva qaziyê bajê' ra,
Hemî ji ecêb û hikmetên dinê ra.

Ezê tu çepera naĥebînim ji xêna çepera [ raserî Divinê.
Xelîtê Mehmed begê mîrê Bihta bi zêr û [ zîv in, xal û nîşan dikevin ê.
Mîrê min tifekê bavêjî Efîno, kalik dikevê [ kambaxa bizinê.

Nêriyo te mala xwe xirabo! nêriyê Geliyê Tawî;
Serê stirihên te zirav in, binê stirihên te badayî.
Mîrê min tifekê ji bizinê biguhêze bavêje [ Evdalê gulîberdayî.

Xwezîka min çi biguhta, bila te ciwab da.
Qentarê nêriya xwe ji Kurikê Qaso berda, [ stûnên gelî li xwe ba da.
Nêçîrvanên me kurîn in, lewma xwe vî têzê [ ra nav da.

Ez tu çepera naĥebînim ji xêna çepera [ Darkevot e,
Şeşxana Mehemed begê Mîrê Bihta diteqihên [ ciht bi ciht e.
Ezê xulamiya tu hakim û tu beglera nakim; [ ji xêna Mehmed begê Mîrê Bihta.

—3—

Di lavija jêrîn de behsa tirba Mihemed begî dikin. Qey ev lavij piştî mirina Mîr hatiye gotin. Ji milê din qala Ebûzêdê-Bilikî jî dikin. Ebûzêd nêçîrvanekî serdeste bû û bergav bi Mîr re digeriya. Di gelek stran û çîrokan de navê wî derbas dibe. Ji xwe dibêjin, di pey mîr re Ebûzêd gelek ne ma û emrê Xwedê kir.

Ev lavij Îsifê Melê ji Hacî-Aliyan gotiye:

Qentarê kul û xema bi rê bine; serê şahiyê [ pê gihayê.
Serê ĥewalê bilind oxilme bestine,
Keviya mezin pala xwe dayê.
Mihemed beg şêxê nêçîrvana namînê.
Lewma ecêbên giran hatine ser dinyayayê.

Ez tu çepera naĥebînim; ji xênî çepera [ Darkevot e.
Berikên şeşxana jê difirin kit bi kit, cot bi cot e.
Ez xizmeta tu mîr û tu ĥakima nakim.
Ji xênî Mihemed begî ĥakimê Bihta.

Nêriyo! te û vê kokê.....
Xelîtên Mehmed begî sirme ne, ketine ser [ zirhokê.
Libika şeşxanê ji eniya Efîno û Hejale bigu- [ hêre, bide nêriyê pişta bihokê.

Mi îro tifekeke divê dev û binî berwecê [ destê mezin, yê Mehmed paşayî.
Mi conikî derman divê du aşiqa bi hev ra [ lêdayî.
Ezê biçim çeperên Mehmed begî, berdim Efîno [ û Hejale, her du evdalên gulîberdayî,

Şevikên çiriya dirêj in; mi xewik nayê.
Bist hilind bîne, pêrû hatine qayê,
Birînê birîndara kul in, medin ber sir û [ sermayê.

Şevikên çiriya çi kurt in, çi dirêj in, mi [ xewik netê.
Te bist bilind bîne pêrû hatine qubletê.
Birînên hirîndara kul in, medin ber sir û [ seqetê.

Ezê serîkî bilind fekirîme; li me bîne gurî.
Qentarê kul û xema li ser dilikê kul de diêwirî.
Piştî Mehmed hegî ez êdî xizmeta tu mîr û [ tu hakima nakim.
Ezê bikim xizmeta wî padîşahî, yê mîr û [ şeh mazûl kirî.

Ezê li dinya qewrik fekirîm, çiqa li mi damayî.
Efîno, Hejale babên kara ne.
Çepera Mehmed begî, şêxê nêçîrvana li [ xwe badayî.
Hege hûn tirba Mehmed begî şêxê nêçîrvana [ nas nekin.
Herin medresa serê meydanê li kêla wî binêrin
Tîrkevan û şeşxane li kêla wî kêşayî.

Ezê li dinya gewrik fekirîm, dinya çiqa [ li min tal e.
Dengê şeşxana li çepera Mehmed begî şêxê [ nêçîrvana nalenal e.
Hege hûn tirba Mehmed begî şêxê nêçîr- [ vana nas nekin;

Herîn medresa serê meydanê; li Kela wî binêrin
Libika şeşxanê daniye ser eniya Hejale.

Nêriyo! te û vê semaxê,
Devçêra Efino û Hejale kursiyê Awal e.
Avdana wî hati bî ser kaniya Şaxê.
Mi heyf û xebînet e, Mehmed beg hakimê
[ Bihta, bimrê pişta xwe bide kendala axê.

Îro nêçirvanê mala bavê mi derketiye bi tenê.
Xwe kêşaye çepera korê, rûserî latên vê Divinê
Nêrî ba dikir bizinê; rabe em biçi govendê;
Lê Ebûzêdê - Bilikî li ber mirinê.

Mêriyo! te û vê kemînê,
Devçêra Efino û Hejale kursiyê Awal e.
Avadana wî hati bî Hirçekînê.
Hingê mi zanî Mehmed beg şêxê nêçirvana
[ namine;
Lewma qentarê nêriya dixweyin li Feraşînê.

Emê lavijên Mîr Miheme bi çend dûrikên bijarte biqedînin. Ev dûrik ji me re serekê eşîra Jêliyan, Resûl ax gotine. Ji xwe reng û dirvê maqûliyê bi wan dikeve.

Êzê li Mihemed begî fedkirim, bi vê xemlê
[ bi vê kokê;
Te xelît û sirme ne, rîşî berdan ser zirhokê.
De tu berê şeşxanê, ji bizinê biguhêzine, ve
[ nêrî wê sekinî; li pêş bihokê.
Heçî me go; te cewab da.
Birê nêriya xwe ji Kortikên - Qaso berda bî;
[ Pilingê - Zêrîn li xwe ba da.
Nêçirvanên me kurî ne, bi têzê re, xwe bi
| Beleka-Reş nav da.

Me goti bû ko zehf çîrok der heqê nêçîrên Nehmed begî hene. Emê vê bendê bi çîrokeke nêçîra hirçan bigehînin dawiyê.

Rojekê mîr bi xulam û mifirdiyan ve çû geliyan. Nêçîrvan li çeperan belav bûn. Ji eşîra keran du brayên aşilmî di çeperekê de bi tenê sekinîn. Mîr gote xulaman: Heta hon dengê tifinga min seh nekin tifingê bernedin.

Dinya zelal bû. Mîr dît; hirçeke fêris berê xwe daye çepera her du brayên aşilmî. Hirç ketibû hikimê tifingê. Aşilmiyan agir ne dikir. Mîr aciz dibû. Hirçê çepera aşilmiyan li xwe ba da û nependî bû.

Mîr bi xulaman ve rabû û çû çepera her du birayên aşilmî. Mîr gelek enirî bû. Di dilê xwe de digot: « Ezê serên wan her du zelaman jêkim; bila sebeb hiştine ko hirç ji ber destên wan xelas bibe ».

Lê gava gebiştin çeperê; Mîr tiştekî welê dît ko lê ecêbmayî ma. Hirç li wê ye, bi pişt û destmalan girêdayî, li erdê veketî ye.

Hirçê gava qesta çepera aşilmiyan kiri bû ber du biran pev şêwirî bûn. Gelo çi bikin? tifingê nikari bûn berdin; ji ber ko hêj dengê tifinga Mîr seh ne kiri bûn. Lê nikari bûn hirçê berdin di çepera wan re bibore. Tifingên xwe danîn, bi dest û û lepan bi hirçê ketin; zora wî birin û ew bi pişt û destmalên xwe girêdan.

Vêca mesela xwe ji Mîr re gotin. Mîr gelek kêfa xwe ji wan re anî; rabû navê yekî kir «Fîl» û navê ê din «Fengenoz» û gotê wan:

— Min hon kirine maqûlên keran; ji ber ko maqûlî heqê mêrê qenç e.

HEREKOL AZÎZAN

# DERKETÎ

ADAPTATION DE « L'EXILÉ » DE LAMENNEAIS

Terka welatê xwe da û kete dinyayê. Xwedê rêberiya derketiyan bike!

Ez di nav miletan re derbas bûm, li min nêrîn, min li wan nihêrt; lê me hevdû nasne kirin.

Derketî li her derê bi tenê ye!

Gava roj diçû ava û ji xircikên newalan dû û dûman radibûn; min ji xwe re digot: « Çiqas bextiyar e, ew mirovê ko êvarari vedigere mala xwe û di nav zar û zêçên xwe de rûdine ».

Derketî li her derê bi tenê ye!

Bi kû da diçin ew ewrên ko ba wan dide ber xwe? Ba min jî wek wan dide ber xwe û bê hemdê min, bi kêfa xwe min dajo.

Derketî li her derê bi tenê ye!

Ev dar spehî, ev kulîlk xweşik in; lê ev ne dar û kulîlkên welatê min in: Tu tiştî nabêjin min.

Derketî li her derê bi tenê ye!

Ev çem bi dileki şikestî li deştê diherike; lê xurina wî ne wek ya çemê me ye ko min di zarotiya xwe de dibihîst; ev tu tiştî nayine bîra min.

Derketî li her derê bi tenê ye!

Ev stran şirîn in; lê ahengên wan ên geş û zîz ne wek yên stranên welatê min in.

Derketî li her derê bi tenê ye!

Ji min pirsîn; « Çima hergav bi girîn î? » Gava min sebeb gote wan; tu kes bi min re ne girî; ji ber ko derdê min fehim ne kirin.

Derketî li her derê bi tenê ye!

Min kalin dîtin; zaro li wan hêwirîne, mîna zeytûnên kevnare ko kelem û derxik li wan hatine hev. Lê tiwan ne gote min, « kurê min! » tu zarokî ne gote min « bavo! »

Derketî li her derê bi te nê ye!

Min di ser kelat û bircan re alin dîtin; lê ne bi reng, ne jî bi pêldana wan, dilê min geş ne bû; ew ne keskesorên me bûn.

Derketî li her derê bi tenê ye!

# TARÎXA

## KURD Û KURDISTANÊ

## 2

Di benda xwe a pêşin da, min ji xwendevanên Hawarê ra da bû zanîn ko, ez dê li ser hin kêmasiyên kitêba Emîn Zekî begî bipeyivim. Warê vê kitêbê ko ez hinekî haydarê me, rewşa erdnîgariya kurdistanê û hejmara gelê kurd e. Piştî ko me di vî warî da zanîna xwe got, eger me xwe bi kêrî axaftina li ser warine din jî dît; bê şik emê xwe jê bi şûnda nedin.

Di tevayiya vê kitêbê da, xwe spartina Emîn Zekî begî ya kaniyan û biyanî bûna nivîsevanên wan kaniyan, li ser gelê kurd û welatê wan kurdistanê, dîsa me di benda xwe a pêşin da goti bû. Tevî biyanî bûna wan nivîsevanan, hinekê wan bi hin qesdên siyasî xwestine ko rastiyê li ber çavên cihanê veşêrin. Eger vê yeka han ji bo demekî, berê xelkê ji rastiyê bada be jî ev gotinên han weke rastiyê yekser di kirasê xwe da namînin û rastiya wan dê bi derkeve. Bi ser vê yeka han da mirov dikare bêje ko, kesî ji wan nivîsevanan bi tevayî, kurd û welatê wan kurdistan ne nasiye. Ji xwe ramana Emîn Zekî begî jî di vî warî da ne dûrî ramana me ye.

Ji ber ko pirtırı her aliyê kurdistanê, ez hêla bakur —kurdistana tirkiyê— nas dikim; piraniya gotinên min jî, dê li ser wê hêla welêt bin.

Di rûpelê 23 û benda «kurd li tirkiyê» da li ser gotina (Sîr Mark Saykis) sinorê welatê kurdan, hêla bakur û roavê holê nîşan dide: (Alajgird — Erzirom — Zara — Êgin — Meletî — Bêsnî — Birecik — Riha)

Sîr Mark bi xweyakirina vî sinorê han, sê wilayetên kurdan bi tevayî û sisiyan ji, nîve nîv bi ser tirkan va berdide. Bi vê yekê rohelat û nîvroyên Erdihan û Qersê; tevayiya Meraş, Entab û Kilîsê, bi bakurê Heleb û rohelatê Skenderûnê va derî sinorê kurdistanê dinimîne. Di vî erdê han da pirtirî milyonek kurd heye.

Di vir da kirina du pirsan serê mirov dixwirîne. 1 - Gelo, Sîr Mark Saykis ev sinorê han bi qesdeke siyasî rave kiriye? an zanîna camêr di vî warî da evqas e?. 2 - Ev erdê ko Sîr Mark ji kurdistanê ra sinor nîşan daye; gelo bi çavên xwe ditiye an li ser kitêb û nivîsarên ko di vî warî da hatine nivîsîn daye xweya kirin?.

Dayîna cihaba vaņ her du pirsan jî ne dijwar e. Ji bo pirsa pêşin ez dikarim bêjim ko, tu qesdên siyasî li pêş Sîr Mark tine bûne. Çima ko, tu deman gelê kurd bi tu girêkên siyasî bi Ingilîzan va ne hatiye girêdan. Ji bo vê em nikarin ji fêlçakiya camêr di şikê kevin. Teqez di vî warî da zanîna wî evqas bûye.

Pirsa didowan, şik tê nîne ko Sîr Mark ev sinorê han ne li ser ditina xwe; hêrgiz li ser kitêb û nivîsanên ko di vî warî da hatine nivîsîn daye xweya kirin. Eger Sîr Mark Saykis ev erdên han bi çavên xwe dîti bana jê ra ne hewceyî dûr û kûr pirsînê bû. Li dorhêlên Kilis, Entab û Meraşê Kulikên Reşiyan û Xidirsoran ên girosî; li dorâliyên Qers û Erdihanê jî, kolozên serhedî û ebayên kin û kundayî çavên wî ne dixapandin. Hinga Sîr Mark dê bizaniya ko, ev erdê han ê gelê kurd e û bê wan kes tê da rûnane.

Yek jî dîsa di wê bendê da, dema cenabê Emîn Zekî beg li ser hejmara kurdan dipeyive; Rihayê ji weke Qonyê, Enqerê û Sêwasê derî sinorê kurdistanê rave dike. Ji bo serwext kirina xwendevanan, min divê wan çend xêzên ko serê min negirtine biguhêzim vir. Di rûpelê 24 an da gava li ser kurdên Rihayê dipeyive dibêje;

« Li ser gotina (Sîr Mark Saykis) û (Bijîşk Ferîc) bê van wilayetan [Erzirom, Wan, Bidlîs û Xarpêt] jî, gelek kurd di welatê tirkiyê da he ne, eşirên kurdan, ên ko li doraliyê «Qizil êrmaq» û di nav wilayetên Qonye û Enqerê da (1) digehên hejde êlan. Hejmara wan nizikî (17000) mal e.

Di wilayeta Sêwaz û rohelatê bajarê Zarê da eşîrên Qoçgîrê rûdine. Vê esîrê pênc bavên wê ên bi serên xwe hene; ko di navbera

(1) Zana « M. Gorges Perrot » di sala 1865 an da, di bendên xwe ên hêja ên ko der heqên kurdên deşta Heymanê nivîsîne û di kovara he rdu dinyan (revue de deux mondes) da belav kirine.

---

Heval, bav û bira, xweşî, rahetî û serbiindî, bi tenê li welêt hene.

Derketî li her derê bi tenê ye!

*
* *

Derketiyê reben! ev girîn û zarîn bes in! Pir wek te dûr hatine xistin; herkesî wek te windabûna bav, bira û hevalên xwe ditiye. Hêviya xwe vejîne û xwe ragire; tu jî rojekê bigehî miraz û armanca xwe, heke îro ne be jî ... sibe!

NÛREDÎN ÛSIF

Erzincan û Zarê da rûdinin. Hejmara wan digehê (12000) mal.

Disa di bakurê Skenderonê da 14 eşir rûdinin, ko hejmara wan digehê (12000) mal. Di liwa (Orfa — Riha) yê de eşira Berazan (2) rûdine ko, li ser diwazde bavan parva bûyî ye. Hejmara vê eşirê ji digehê (17000) mal. Tevayiya van eşiran ko 50 hezar mal e, digehin nizîka 360 hezar can. Gava me ev xistine ser kurdên Qers û Erdihanê, tevayiya kurdên tirkiyê, bê kurdên Iraq û Sûriyê, ji du milyonan pirtir dibe».

Ji vê nivîsana ban dixewine ko, Emin Zekî beg liwa Rihayê jî wek Qonye û Enqerê derî kurdistanê dihesibine û di vê liwa kurdî ya mezin da, Berazan tenê kurd dizane. Ne ez tenê, hemî xwendevanên Hawarê qenc dizanin ko; Riha, bê qeza Ĥeranê tevî dorhêlên xwe kurd e. Ji kurdan pêve kes di wî erdî da rûnane.

Riha bajarekî kurdmancî ye. Xelkên tê da hemî bi zarê kurdmancî dizanin. Eger, bê zmanê xwe gelemperiya xelkên tê da bi tirkî an bi erebî zanî bûne, divê ji kurdîtiya wan tiştek kêm nebe.

Dorhêlên Rihayê ji şeş qezan bihevketiye. Biçûktira van qezan Ĥeran bi ser sinorê Sûryê va ye, ko tê da erebên Gês (Qeys) rûdinin. Lê her pênc qezayên mayî xwerû kurd in, ko emê xelkên wan qezan eşîr bi eşîr bêjin.

1 — Sêwrek: Xelkên bajêr ji rûkî zaza ne. Di dorhêlên wê da eşîrên Bûcax, Qirwar Milan û Qeregêcî dimînin.

2 — Hilwan (Cirnê reş) bajarê vê qezayê biçûk û xwerû kurdmancin. Di dorhêlên wê da hêleke Milan û Qeregêçiyan tevayiya eşîrên Sinika, Dodikan, Hecî Mûsan, Îzolan, Badilan, Dûgerînan tevî çend gundên Gevozan dimînin.

3 — Yalax (Hewag): bajar û dorhêlên vê qazayê bi ser û berên xwe va ji eşîra Bêzikan in.

4 — Birecik: Ev qeza jî bi ser û berê xwe va Bêzik e.

5 — Ordû (Sirûc): ev qeza, bê du sê eşîrên wek Mersawî û Poxpinikan biçûk, dawiya mayî hemî Berazê serxet, anê yê tirkiyê ye. Çiqas ko ev qeza berê gelekî mezin bû jî; piştî çêbûna hikûmeta Sûriyê, di sala 1919 an da hêla Berêz a mezin dane ser welatê Sûryê. Berazê Sûryê bi qeza Eyn-el-ereb (kaniya ereban) bi nav dibe.

Liwa Rihayê ko tê da Berazan tenê kurd hatine nîşandan, ji van qezan û eşîran bi hevketî ye. Xelkên tê da, bê qeza Ĥeranê ji rûkî kurdin.

OSMAN SEBÎ

(2) Sir Mark sayks, kitêba « tiras el xulefa ya dawiyê » rûpel 572 - 586.

## DILAWRÊ ÇARDESALÎ

Ceng e. Ji Piranê şêxekî mezin, sergevazekî hêja rabûye û dike neyaran ji Kurdistanê derîne û welêt aza û bi ser xwe bike.

Her bihustek ji erdê welêt bi xwînê dihate avdan. Kurdan çek û posatê xwe girêda bûn; berî dabûn qada şer.

Dilawer xorteki çardesalî bû; bi zor diya xwe razî kir, jê xatir xwest, tiûnga bavê xwe bi milê xwe ve kir û giha şerevanan.

Şerevanî diçûn kelehê. Dijmin ev çarsed sal in; ala kurdan ji kelehê daxistî bû, ya xwe hilda bû şûnê.

Leşkerên kurdan gihaştî bûn pêşiya kelehê û xwe ji direjkirinê re pêk tanin. Dilawer xwe di erdê re kişand û ket pêşiya esker; serê xwe hilda û got:

— Mêrxasino welat weke gulekê ye; carcara bi xwîna welatiyên xwe divêt bête avdan. Ez dibinim ko gula me çilmisiye divêt em wê bi xwîna xwe av din

Dilawer gotina xwe temam kir û beriya berkesî tiûng teqand û direjî dijmin kir.

Bi qasî du saetan li hev xistin. Dijmin hew dikarî xwe li ber lingên kurdan bigire; keleh berda û revî.

Dilawer berî hemiyan ket kelehê; ala neyar jê daxist û ala rengîn di şûnê de daçikand. Dilawer giha bû mirazê xwe.

Erdê bin lingê Dilawer sor dikir. Xelkê digot qey Dilawer ala neyar xisti ye bin lingên xwe. Dilawer birîndar bû; lê tu kes pê nehesandi bû.

Şerevanî gihane dora Dilawer, dixwestin birîna wî derman bikin. Birîna Dilawer xedar bû û Dilawer pê dizanî bû. Ji xelkê dora xwe re got:

— Hevalino! birîna min xedar e; birîna mirinê ye. Ne tu xem e. (Dilawer hinek sekinî ji bêrîka xwe aleke rengîn derxist) Bi tenê min ji we divêt hon vê alê bikin kefenê min, cendekê min di ala kurdan de bipêçin û ji diya min re bibêjin ko birîna min ne ji par re bû.

SIBHÎ RESÛL

# ROVIYÊ JÎR

Min bibîst ev ji kalan
Dibên rojek ji rojan
Lê xewinîn gur û şêr
Gurî li pê kir gazî
Gurî gotê : ho birak !
Eve şahê dilwer
Da me bibî newalan
Nema birçî dimînî
Rovî živirî cem wan
Gelek bû bû jar û qels
Şêr bi halê wî kenî
Min her dixwest ji Xwedê
Di vî emrê xwê ê pir
Mala xelkê bisojim
Wî çav da bû devê şêr
Bide pêş me zû biliv
Haydê cikî bi nêçîr
Rovî di pêş wan da çû
Çûn devêrek bi çapan
Şêr dengekî gurmijî
Bû kazekaz se revîn
Xew li şivên tewirî
kesek ne ma di wî cî
Şêr gote gur here wir
Bi lez û bez gur revî
Çû gihêşte nava pêz
Di nava wî colê pir
Dema rovî dît nêçîr
Zûka sûn kêr û sadir
Rûnişt li ser totikan
Li cem wana veket şêr
Gur û rovî wek biran
Şêr gote gur : parvake
Guri çepil vemalan
Serî, gurçik teve dil
Rakirin tev dane jêr
Dûv û herçî goştê nerm
Gava şêr dît yeka han
Gurmista xwe hilanî
Rep bû dêla gurê zer
Teriya gur dihezî
Got : Roviyo tu yî jîr
Vî goştê han parvake
Piştî ko ev halê ban
Bi sed fên û du sed lûç
Hol bû di ser laşa gur
Ne got hestî, goştê nerm
Birin danîn li pêş şêr
Got : ji bo min bes e ûr
Ji bo min ev çetir in
Şêr gote wî aferîn,
Tu fêr bûyî sevê pîr,
Rovî gotê : ez xulam
Min ne dîn wek gurê zer
Malbata me roviyan
Têne nasîn bi jîrî
Çavên Gur ên zîq û çep
Bela bir ji derê min

Şiret ji bo hevalan
Rovîkî req dikojan
Rabû revî serberjêr
Rovî got : çi dixwezî ?
Me xulamek divê çak
Divê bike te rêber
Bikin nêçîr û talan
Zikî ji xwe d'êşînî
Silav da ji dil û can
Birçî, rûtal û teres
Rovî digot : ez benî
ko min têxe ser vê rê
Bibim xulam ji bo mîr
Têr hestiya bikojim
Gurî got : ho kerê nêr
Me j'te navê çol û çiv
Welê emir dike mîr
Şêr û gur tev dane dû
Kerîk pez dîn bi şivan
Erd û ezman tev hejî
Mihî li hev dicivîn
Ew jî revî veşirî
Pez hêliştin vê xwedî
Du pezên çak bîne vir
Nabêj çapan û devî
Dido dido kirin rêz
Girtin anîn du kavir
Da lotikan li pêş mîr
Tanîn didan destê gur
Carcar didan lotikan
Gur rakirin das û kêr
Serjêkirin tev guran
Para min jê cida ke
kete ser goşt kir talan
Her du kezeb her du mil
Got : evana para şêr
Ji bo xwe hişt ma li cem
Ji qehra xwîn ket çavan
Di navçava Gur danî
Herdu çavan baz da der
Şêr dane xwe du tezî
Were vêcar tu kizir
Para min jê cida ke
Rovî dît bi du çavan
Bi wê geda bindirbûç
Rakirin kêr û sadir
Rakişandin ber du term
Bi şûn da hat heya jêr
Tev rêviyê wek bilûr
Ji serê min zêtir in
Ji kû ev eqil û zanî ?.
Kesek nabe hinde jîr !..
Ji Kurdistan heya Şam
Bê mêjû û zirt û ker
Di nav wehş û koviyan
Para me ye kizirî
Dêla wi a hişk û rep
Pir eqil xist serê min

15-2-941 Şam — Hibûbî

OSMAN SEBRÎ

# GULÊ

Gundî di mêvanxana Reşo de rûniştî bûn û daxaftin. Dijmin ji gund bi tenê qonaxekê dûr bû, nixta gundê Şadiyan di nêzik de wê biketa axa bav û kalan.

Herkes diponijî, û li çarekê digeriya.

Ezman girtî bû ; bandevekê ji reşiya şevê re hîn hêtir tirs dida. Di vê gavê de derî bi şidet vebû ; qiralê çiyan, Qoçoyê Pola, bi heşt mirovên xwe ve ket hundir. Cilên wan şil bûn ; av di tifingên wan re dihate xwar. Gundiyan gişa da ber qîran : « Polayê kurd, sergevazê çiyayên kurdistanê fermo ! »

Lê Qoço rûnenişt ; di nîvê odê da ma û wek serdarekî bi dengekî xurt û gur gote wan : « Gundîno ! ev panzde sal in ko ez gunehan dikim. Xelkê dikujim. Xerabiyê dikim. Stranên min di van rêlên rojneditî de hatin gotin, lê ji dihî vir da ji devê tu kesî dernakevin. Belkî ji bo me hemiyan, ev şev, li ser axa welêt şeva me a dawiyê be. Ji bo avêtina gunehên xwe ji ser xwe min sond xwariye ko dijmin ji welêt derêxim».

Sorahiya rivîna agirê êzingan di tifikê de li diwaran dihejiyan. Pola li dora xwe dinêrî. Çavên wê diçirisin. Çil gundî tev de rabûn û gotin : « Em jî sond dixwin, em jî bi te re ne, pilingê kurd ! »

Di wê gavê de, ji nişkê ve derî vebû, jinikeke zirav, narin û şirîn, wek pelekî dara bişengê li ber bayî, ket hundir û got :

« Ez jî bi te re me ez jî mêrê pola ! »

Gundiyan gişan bi dengekî weke ken kir qîr : « Gula qehdik ! Gula bê namûs ! »

*
* *

Gulê ji gund bû. Berî çend salan bavê wê bi zor ew da bû yekî. Gulê rojekê mêrê xwe kuşti bû, keti bû pê Qoço û li serê çiyan pê re digeriya. Gundiyan bi çavekî nebaş lê dinêrîn, her gav jê re dijûn dikirin û deriyên xwe her gav lê digirtin. Ji tirsa Qoço ne bûya belkî ew dikuştin. Lê, ne tehqîra gundiyan, ne jî tajanga Qoço ji Gulê re ev rê nedida berdan. Gava Qoço ew dida ber tajanga, Gulê digotê : « Li min xe pilingê min ! li min xe ! heya destê te biweste ! Tu jîna min î ! Ez goriya te me. Bê te ez nabim ! »

Di çiyan de bi Qoço re ger, di şikeftan de raketin, di berfê de qufulîn, jê re bextyariyeke mezin bû.

*
* *

Wê şevê Gulê dîsa digirî, lê îcar ne ji êşa

tajanga Qoço va ko wek mareki xwe li bejna wê a zirav dipêçand. Xew, qet ne diket çavên wê. Dijmin dê biketa welêt... Rojên geşi ji bo wan ne diman. Her tişt dibû xeyal. Dengê topên dijmin gelek nizik dihatin bihîstin..., Çiyayên Qoço ên serbest diketin destê dijmin.... Jina gund a pis li ser vî halî bi girîn diûkirin. Li çara xelas bûnê digeriya. Divî bû ko gundê xwe, welatê xwe, çiyayê xwe û serbestiya pilingê xwe « Pola » ji dijmin biparêze. Ji nişkê ve rabû. Tiştek hatibû bîra wê. Xencereke bi şiv girt. Ji şikeftê derket. Riya aliyê dijmin girt û winda bû.

**

Qoço, bi çil gundiyên xort û mêrxas ve li pêş dijmin kemîn girti bûn. Hingûra şevê bû. Li ser çiyayên bilind, nîvreş heyveke sor bi dilekî şikestî hêdî, hêdî hildihat. Dengê topan hati bû birin. Pola çavê xwe li ser çiyayên xwe; li ser warên xwe geran û bi keser li wan nêrî:

Wî sond xwari bû; gunehên xwe yên panzde salan wê bi destê xwe rakirina, ne hişta ko dijmin derbazî tixûbên welêt bibe...

Di dilê wî ê pola de agirê serbestiyê pêketi bû. Wî tu caran wek wê şevê hej kuştin û hilanina tola xwe ne kiri bû.

Demekê, Gulê hat bîra wî. Wî hej vê jinikê dikir. Li dora xwe nêrî; lê Gula xwe ya ko wek sihekê jê ne dibû ne dît:

Di wê gavê de nêrevanekî wan got:« Bala xwe bidin! ji aliyê dijmin yek tê.»

Siha ko xweya dikir bê tirs û telaş dihat, Dengekî şikên wan rakirin:«Ev Gula qehbik e!»

Gundiyekî din got: « Qehbikê em xistin fexê! Tifingê berdê Pola! ew rêberiya dijmin dike!»

Qoço rûyê xwe tirş kiri bû; birihên wi lê gijgijin, kûr li pêş xwe dinêrî. Wî ji gotinên gundiyan rast didîtin:

Gulê li cem dijmin çi dikir? Ne xwe cihê wan şanî dijmin kiri bû... qehbitî kiri bû.

Qoço di bin ronahiya heyva sor re tifinga xwe dirêjî Gulê kir û got:

— Ha ji te re, Gulê! beri dijmin berika pêşin para te be...»

Berikê wek qîrekê tariya şevê çirand û armanca xwe a zirav wek çarşeveke hevrişim raxiste erdê.

Pist re Qoço rabû ser xwe û ji gundiyan re got: « Zû bin hevalino! emê nixta dijmin bigrin!»

Çûn. Lê dijmin bê li berxwedan revîn. Kurd ketin asêgehê; her der vala bû. Bi tenê di odekê de tiştekî ecêb dîtin.

Serê zabitê dijmin ji laşê wî hati bû birîn û mezel bi xwîn bû. Li ser nivînê xencereke bi xwîn diçirisî.

**

Qoço xencer rakir; wî ev xencer dabû Gulê? Di kulma zêbit a guvaşti de gurzek porên Gulê ên zer pêl dida.

Qoço kulmikên xwe gez kirin û wî pilingê ko çiya dihejandin ji bo cara pêşin giri û gote gundiyan: « We bi min gunehê paşin da kirin, ji Gula qehbik re me qehbitî kir!»

Bi dengekî têrêş, têrpoşmanî û têrbirîn gotina xwe a paşin kir: « Gulê! te deynê xwe da, te gunehên xwe rakirin! niho dora min e Gulê! Gula min a zer!»

Bi xencera xwîndar wek hayekî ji odê derket, berê xwe da dijmin û nema xweya kir.

NÛREDÎN ÛSIF

JI DÎWANA CEGERXWÎN:

## ALA RENGÎN

Ala rengîn pîroz bî xweş
Te hildigrim diçim bi meş
Tu l'ser milên xortên ciwan
Di nav te de yek rojek geş
Ala sê rengî tu
Bî nav û dengî tu
Nîşana ceng î tu
Ey xortên kurdan!
Silavê lê bikin.

Îro, me tu kiriye himbêz,
Rojek wê bê, te bikin rêz
Di eywanan li ser banan
Rojên şadî tu xemil û xêz
Kesk û sor û zer î
Sipî û gewher î
Nîşana zefer î
Ey xortên kurdan
Silavê lê bikin.

## KÎ BI YA MIN DIKE

Ey dewlemedê serbilind,
Ma te çima ser daye xew,
Pir mal û zêr û milk û gund,
Bo çi dixwî her nan û dew?

Carek li Ewropa binêr,
Her kî xudan milyon û zêr,
Çaxê ko tê roja welat,
Zêran didin merdane ew.

Rabin, li we îro xebat,
Em jî digel we, bo welat
Çêkin dibistan û civat,
Zarok bixwînin roj û şew.

Îro xebat, karê te ye;
Lewra ko şans yarê te ye,
Her kes di bin barê te ye
Peyvên te rast, yên min derew.

Dîsa ceger min bûye xwîn,
Dîn bûm ji dest min çûye dîn;
Bo min welat şîrîn û zîn,
Her şev li ser axîn û tew.

CEGERXWÎN

STÛNA XWENDEVANAN :

## HEÇÎ DIPIRSE DIELIME

### PIRSÎN NE ŞERM E; LÊ NEHÎNBÛN ŞERM E.

Mę ev stûn ji xwendevanên xwe re vekir. Emê tê de li pirsiyariya wan vegerînin û bixebitin bi pend û şiretên xwe bi kêri wan bên. Bi tenê me hêvî ji xwendevanên xwe beye pirsiyariyên xwe kurt binivîsinin û dirêj nekin. Ji milê din ev stûn bi karê elbika postê ji wê rabe. Ev in pirsyari û cewab.

### Mirza Hişyar — Amûde

Kurdmanci divêt bi tîpên kurdmancî bête nivîsandin. Ji xwe ji mektûba te dixuye ko tu qenc bi tîpên zmanê xwe dizanî. Ji lewre em ji te hêvî dikin careke din nivisarên xwe bi tîpine biyanî nenivîsînî.

Di nav nivîsarên te benda « Navên kurd û kurdistanê » bi kêr dihat; me ew xiste hejmara 28an. Ji nezimê hêtir mêla xwe bide nesirê. Ji xwe zman bi nesirê têtê pê. Ji şihir û nezimê re qabileyeteke cihê divêtin. Ew qabiliyet zikmakî ye û di her kesî de nîne. Hebûna wê wesfekî qenc bihe jî nebûna wê ne tu kêmanî ye.

Xortên ko dixwazin xizmeta zmanê xwe bikin û hêj ji ber xwe de nikarin binivîsînin ji wan re kaniyeke kûr, mezin û fireh heye. Ava wê kaniyê tucaran naçike: « Folklor » yanî çirok, çîrçîrok, stran, medhelok, mamik; tiştên ko xelkê gotiye. Xortên me dikarin van tiştan ji dengbêj, çîrokbêj û ji kalan bipirsin û bêî ko tu tiştê wan biguhêrînin, weke xwe binivîsînin û ji Hawârê re rêkin. Em wan bi navên xortên ko ew ber hev kirine belav dikin.

Xortên me di dora folklora ko wê binivîsînin, ji me re tiştine bi ehemiyet û spehî jî dikarin bidin zanîn. Mesela, yekî stranek nivîsandiye, di dora wê stranê de gelek tişt hene ko mirov dikare wan seh bike û bide zanîn. Wekî niho: heke ew stran li ser şerekî ye; ew şer di navbera kîjan eşîran de çêbûye? ew eşîr li kû derê rûdinin? ew eşîr berê diçûn kîjan zozanan? xelkê wan eşîran bi çi mijûl dibin; destxetê wan çi ye? xaliçe, mehfûr an tiştine din çêdikin ???..

### Mirza Fiad Melazî — Cerablûs

Kiryariya Hawarê a salî 500 qirûşên sûrî ne. Me hejmarên ko beta niho derketine şandine adrêsa te. Ji kerema xwe heqê ebonê li ser navê xwediyê Hawarê rêke.

### Mîrza Mihemed Îsa Cengbaz — Telêlûn, Derbasiye

Ji hisên te ên milî re gelek kêfa me hatiye. Xwedê te bihêle û mirovên welatparêz, mîna te di nav kurdan de zêde bike. Ji kerema xwe navên mirovên ko dixwazin bibin ebona Hawarê ji me re binivîsîne da ko em ji wan re kovarê rêkin.

Poste reşbelekên kurdmancî qebûl dike. Bi reşbeleka te re çend reşbelekên kurdmancî jî gibaştine destên me. Ji lewre, ji niho pê de ji me re bi kurdmancî binivîsîne.

### Mîrza Temoyê Xelef—Cemşeref, Eyndîwar

Mîrza Xelef ji me dipirse: : Şer kengê dest pê kiriye, wê çiqas dom bike û wê kengê xelas bibe?

— Şer di yekê Îlona 1939 an de dest pê kiriye. Ev rahet e. Lê wê çiqasî dom bike û wê kengê xelas bibe; ev îşekî zehmet e. Bi me di dinyayê de tu kes nikare li vê pirsiyarê vegerîne. Digel vê hindê tiştên ko di vê babetê de heta niho hatine gotin emê wan ji xwendevanê xwe re bi kurtî bidin zanîn.

Di destpêka şerî de Çorçil, reîswezaretê Ingilterê goti bû: min pênc sal dane ber çavên xwe. Hîtler, rêberê elmanan, lê vedigerand û digot: ez jî karê xwe ji bo deh salan dikim.

Îsal, li serê salê, Çorçil digot: şer sê salên din wê dom bike. Hitler jî di wê demê de nitqek digot û ji miletê xwe re dida zanin ko şer di sala 1941ê de û bi zefera Elmanyayê wê biqede.

Lê piştî şerê yewnanistanê, yanî berî meh û nîvekê Hitler di Reyxstagê de nitqek da û got: « Çekên me îsal ji par bêtir in; sala tê ji îsal jî wê bêtir bibin. »

### Mîrza Hesenê Sado — Banê - Qesir, Dêrik

Pirsyarî — Elman li tu kesî teqsîr nakin. Heçî miletê ko li biwara wan dikevin, li wan dixin. Neyarên me jî ketine biwara wan; çire li wan ne xistine û naxin?

Cewab — Dinya bi dor e, ne bi zor e.

### Mîrza Mistoyê Remo—Girê - Şêran, Cerablûs

P — Ji Çorçil û Hîtler kî ji kê mezintir e?

C — Bi emir be, Çorçil apê Hîtler e. Hîtler 52 salî ye; Çorçil di ser şêstî re ye. Bi ritbe be, Çorçil dîsan ji Hitler meztir e. Çorçil di ordiwê de bînbaşî bû; Hitler onbaşî ye. Herçî xurtî, îro bi çek û posatên xwe Hîtler xurtir e. Bi tenê stola Çorçil bi piranî ji ya Hîtler meztir e. Lê mezinahiya ko tu dibêjî di dawiya şer de wê bixuye.

### Mîrza Reşîdê Kurd — Amûde

Wer dixuye ko tu dixwazî wesfê tixubên Kurdistanê bidî. Herwekî me ji mîrza Hişyar re got şihir bê wezin nabin. Ji lewre nivîsara xwe bi nesirê û bi awakî tekûz binivîsîne da ko em hikarin wê bêxin Hawarê.

### Mîrza Mewlûdê Şêkir. Tilşeîra Aşîtan. Qamişlî

P — Kurdên Qevqasê bi çi zarî daxêvin? Bi kuremencî an bi bahanî?

B — Kurdên Qevqasê bi kurdmancî daxêvin. Ew kurd di xwendin û nivîsandinê de ji kurdên din pêştir in. Rojnameke wan bi navê « Riya Teze » heye. Di her gudekî wan de dibîstana zarokan û li Rewanê dibistaneke mamostan heye. Csm wan gelek kitêbên kurdî ketine çapê.

## DILGIRSÎ Û DILOVANÎ

Miroveki xwe û zarowên xwe bi xebata destê xwe bi xwedî dikirin. Qencbûna sihet û xurtbûna milên wi, tim jê re kar û xebat pêk tanîn. Bê zehmetekî pir, di riya xebatê de jîna xwe diqedand. Lê wextek hat ko belengaziyeke mezin kete nav welêt. Êdi xwedi peran nema ew li cem xwe dixebitandin. Çima ko, tu kar ji wan re di wê xebatê de ne diman. Destengî ewqas pêş de çû ko dewlemend ji birçî mayinê ditirsin.

Mirovê han jî wek xelkê belbi hin pirtir barê dijwariya vê tengasiya han hiltanîn. Ew çend qirûşên ko di firehiyê de bi xwidana eniya xwe civandî jî xwarin. Dû re tiştên nava malê jî di wê rê de çûn. Lê dawiya wan rojên teng ne dihat. Gava xwe û birçîbûn li ber hev dîtin, nexweşiyê jî lingê xwe avêti bû hundirê malê û xelkê malê li pê hev xisti bûn nav nivînê. Heya wê demê destên xwe li pêş kesî xweher kirin ne hati bû bira wi. Vi halê han ew ajoti bû ber derê cîranan.

*
* *

Di rex mala wi de yek ji ê din dewlementir du cîran hebûn. Rabû çû nik yeki wan û halê xwe jê re got. Dewlemendê pêsin miroveki dilhişk bû. Agahiya wî ya ser halê cîranê belengaz tu deriyên qençî û comerdiyê ji dilê wi venekirin. Bi gotinên xweş mirovê belengaz jî rûyê xwe da alî.

Ji ber ko wi mirovê zivar di emrê xwe de destê xwe ji ber kesi xwar ne kiri bû, rûhişkiya dewlemendê pêşîn yekcar ew ji comerdiya camêran bê hêvi kiri bû. Çavên jinik û zarokan li vegera wî a mal bûn; nizanî bû ko çawan destvala vegere mal. Dilê wî ê girs ne dixwest êdi here ber derê tu kesên din.

Bi dilêşi berê xwe da mal û vegerî. Dema di ber mala dewlemendê din re borî bê ko ew bibine, mirovek wek sikê li pê wî çû bû. Gava mirovê zîvar bi dilê şikestî keti bû xanî û nav koma zar û zêrçên xwe ên birçî û nexweş; mirovê ko li pê wî hatî jî li ber derî rawesti bû. Ew mirov cîranê wî, dewlemendê din bû.

*
* *

Jin û zarokan bi diltengî li çavên wî dinêrin, dixwestin tê de şopa comerdiya cîranan bibînin. Lê sed mixabin ko ji çend hêstiran pêve tiştek ji çavan ne dixuyan. Jina wî destvala bûna mêrê xwe bîr biri bû; lê dîsa xwe ji pirsînê ranegirt:

— Gelo, te ji cîranan tiştek çar ne kir? Mêrik bi dilekî şewitî lê vegerand û got:

— Na. Ez çûme cem yekî, rûyê xwe ji min bada. Ê din jî; ez neçûm balê. Dewlemend ji hezkirina peran pê ve çi dizanin? Wan mirovatî, camêrî, dilovanî hemî ji bîr kirine.

Di wê gavê de bû ko deri vebû û yek kete hundir û got: «Cîranê delal! bê ko tu riya xwe bi min xînî, te ez jî bi agirê dewlemendê din şewitandim. Dewlemend hemî ne malperest in. Hin hene ko wek we, ji comerdiyê hez dikin. Ji îro hi şûn de tu jî wek birayekî min di nav mala min de xweyî par î.»

Bi destê belengaz girt û bir. Ji wê şevê bi şûn de heya ew destengî di welêt de rabû mêrikê zivar tevа zarowên xwe di mala cîranê dewlemend de ma û tu tengî ne dit.

FIAD CEMÎL PAŞA

## XWÎN NABE AV
## XWARZÊKE KURDAN

**Xanimeke xwende û mamosta dîhistanê ji me re gaxezek rêkiriye, digel deh lîreyên sûrî. Kaxeza xanimê bi erebî ye. Me ew wergerande kurdmanciyê. Eve kaxeza xanimê.**

Gerînendeyê Hawarê ê giram.

Ez bi kurdmancî nizanim û nikarim bibêjim ji ez kurdmanc im. Ji ber ko bavê min ereb e. Lê ez xwarziya kurdan im; û gelek heji wan dikim. Belê diya min kurdmanc e.

Diya me ji me re dibêje ko gava bavê wê ji Kurdistanê hati bû Şamê ji kurdmanciyê pê ve bi tu zmanan nizani bû; ne bi tirkî, ne bi erebî.

Lê îro diya me bi xwe bi kurdmancî nizane. Ji ber ko wê zû mêr kiriye û ji xelkê xwe veqetiya û zmanê xwe ji bîr kiriye.

Belê ez gelekî hejî kurdan dikin û nemaze kêfa min ji dirûf û girêdana wan re têt. Carina ez kurdên Cizîrê, li sûkê dibînim û li şal û şapikê wan heşmetkar dimînim.

Ez ji we hêvî dikim, min jî bêxin nav xwendevanên Hawarê û diyariya min a kiçik qebûl bikin.

Ez Hawarê di çentikê xwe de digerînim û bi kêf û xweşî lê temaşa dikim. Bêî ko ji xelkê bipirsim hînî çend pirsan bûme; mîna «sal, hejmar, sêşemb». Ji ber ko miqabilê wan ên frensizî li ber e. Tefsîra Quranê jî pirsek hînî min kir «çêlek». Divêt «sûretê çêlekê» «sûret el beqere» be. Ji ber ko quran bi vi sûretî dest pê dike.

Dilê min heye di tatîlê de ji xwe re mamostakê peyda bikim û hînî zmanê kurdmancî bibim. N. Q.

HAWAR — Me ji xwarziya xwe a nekurdbav gelek minet e; em spasên xwe ên kûr jê re ber pê dikin. Heke dilê wê heye hînî zmanê kurdmancî bibe, bi her awayî em jê re sekinîne; em dikarin jê re mamostê ji peyda bikin.

Ev ji bo zirxwarziya me. Gelo xwarziyên me ên kurdbav û braziyên me çi dikin? Hînî xwendin û nivîsandina zmanê xwe dibin. Heke hin hene ko hêj dest bi hînbûnê ne kirine; me hêvî heye ko xêreta zirxwarziya me ji wan re tajangeke xurt û derseke kûr e.

## HEDÎSÊN CENABÊ PÊXEMBER

REHMET Û SILAVA XWEDÊ LÊ BE

148 - Yê ko namûsa heval û brayê xwe diparêze, Xwedê ji namûsa wî diparêze.

149 - Yê ko devê xwe digire digihe selametê.

150 - Yê ko hîlekariyê dike ne ji min e.

151 - Misilman ew e ko xelk ji bext û zmanê wî ewle ne.

152 - Yê ko baweriya xwe bi Xwedê û hiroja piştdawiyê aniye; cînarê xwe na êşîne û aciz na ke.

153 - Yê ko baweriya xwe bi yezdan û bi axiretê aniye qedrê mêvanê xwe digire.

154 - Yê ko heywana xwe diêşîne ta ko ji siwara derkeve; ne ji min e.

155 - Mirovê ko tobe bike, weke ko guneh ne kiriye.

156 - Heke hevalê te nefsa xwe ji tiştê ko tu pê ne qail î bêrî dike; rast be ne rast be înaniya xwe pê bîne.

157 - Binivin, lê ko hon hişyar bûn dest bi gotin û kirina qenciyê bikin.

159 - Saxbûn û tiralî bi hev re bikêr na yin.

159 - Yê ko mirovên di xwe bi xwedî dike weke sedeqe daye.

160 - Yê ko poşman dibe, dibe tobedarê Xudayê xwe.

161 - Xelkê hêja du texlît in yên ko hîn dikin û yên ko hîn dibin, ên mayî bê kêr in.

162 - Jin mîna xwehên mirova ne, divê qedrê wan bê girtin.

163 - Mirov mîna madena ne; hin kêmeyar in û hin jî giranbiha ne.

464 - Kovan û keser mirov dighînin nîvê pîrîtiyê.

165 - Yên ko devê xwe na girin her belayê dibînin.

166 - Her arîkariya belengaz û biçareyan bikin; xwedê wê arîkariya we bike.

167 - Yên ko ji taqeta xwe bêtir ibadetê dikin nefsa xwe dibin helakê.

168 - Tenayî ji civata xirab qenctir e; û civata qenc ji tenayiyê çêtir e.

169 - Wey li wî miletê ko zanayên wan, şêx û axayên wan xirab û bêkêr in.

170 - Sunda me xwin; an honê poşman bibin an derewker derkevin.

171 - Heçî xedar û nefsmezin in; roja piştdawiyê de wê bibin mîna mûriya û xelk wê pê li wan bikin.

172 - Xwedê bejî wî mirovî dike yê ko gava tiştekî dike qenc û rast dike.

173 - Gava hon dibînin ko mirovek xirabiyê dike; an bi destê xwe an bi zmanê xwe wî jê bidine paş, heke hon pê ni karin dia bikin ko ew dev ji wî îşê xerab berde.

174 - Heke hon zalimekî bibînin û destê wî na girin û berdidin ko ew zilmiyê bike xwedê we hemiya diêşîne.

175 - Cihada mezintir ew e ko mirov ji hakimekî zalim re rastiyê bibêje.

176 - Bav deriyê buhuştê ê navîn e, ko te qedrê bavê xwe girt, ew deri ji te re vedibe, ko te qedrê wî ne girt ew deri li ber te wê bê girtin.

177 - Ko xwedê keçikek da we; wê qenc bi xwedî bikin; ew sibe nav beyna we û agirê dojehê de dibe bedenek.

178 - Yê ko du keça bi xwedî û mezin dike; di roja piştdawiyê de bi min re dimeşe.

179 - Yê ko keça xwe na êşîne û bernade ko brayê wê, wê biêşîne dikeve buhuştê.

180 - Ez û mirovê ko îşê sêwîkî digerîne di buhuştê de em hevalê hev in.

181 - Yê ko rêwiyekî bibîne û xwarina wî bidiyê bêşik dikeve buhuştê, meger ko wî gunehek kiriye ko na ye efiw kirin.

182 - Tu qenciyê kêm me bîne, dev li ken bûn ji qenciyek e.

183 - Tacir di roja piştdawiyê de bi fesadker û awana re ye, meger ko ew ji Xwedê tirsiyar bû, qencî kir û di dan û standina xwe de rast bû.

184 - Ko yekî qencî bi te kir divê tu jî qenciyê pê biki, heke ji destê te na ye pesnê wî bide; heke tu qenciya wî na bêjî û vedişêrî kafir î.

185 - Çavê ko ji tirsa Xwedê giriya ye û çavê ko misilmana jî xirbiyê parastinê agirê dojehê li wan çava na keve.

---

## TEFSIRA QURANÊ

Nîşanek — Di çapkirina ayeta şêst û şeşan de xeletek çêbûye.

1 — Tefsîra ayetê a rast ev e:

Me ev tişt da qewimandin; ji bona ko mirovên hazir û çêliyên di wan ibretekê jê bigirin û me pê şîret li bawermendan kir.

2 — Ayeta ko bi hevoka « Gava we ew tişt dît..» destpê dike ayeta heftê û çara ye; ne a heftê û sisiya ye.

3 — Ayeta heftê û şeşan de despêka rêza sisê (em lê vedigerînin) xeleta çapê ye, di Quranê de nîne. Rêza çara de (û cuhî) jî nî ne.

4 — Ayeta heştê û nehan bi awayê jêrîn despê dike: « Û gava ji aliyê Xwedê ve ... » Dr. K. B.

## BıNGEHÊN
## GRAMÊRA KURDMANCÎ

BI NAVÊ YEZDANÊ PAK Ê DILOVAN Û MIHIRVAN

— 3 —

Dunik — Dunik dikevin pêşî û paşiya wan pirs û komekên ko mirov wan ji derve ditîne û têxe qisetê. Te ne bihîstiye ko dibêjin: «Her tişt bi zravî dişkê; mirov bi stûrî». Ehmedê Xanî ji bo kitêba xwe gotiye:

« Ev meywe eger ne avdar e »
« Kurdmacî ye ev qeder li kar e »

Xêzek — Dema ko qiset dikeve şiklê axaftinê û carê ko xeberbêj diguhêre; li pêşiya gotinê xêzekek tête danîn;

Mizgînî dan kerê û gotin ê:
— Dehşik ji tere bû.
Kerê li wan vegerand û got:
— Êmê min kêm, barê min zêde bû.

Bendek — Bendekê datînin navbera du bêjeyên ko di navbeyna wan de hogiriyek heye. Kariyê - belek. Kariyê - kelehê. Birca - Belek. Bedir - Xan.

Ji milê din gava ji kêmbûna cih kîtên bêjeyê ji hev de dikevin ev nîşandek wan kîtan bi hev re gîrêdide. Hingê bêje dibe du perçe; perçekî wê di paşiya xêzekê de dimîne û perçê din dikeve pêşiya xêzeke nû.

Gava ev bêgavî tête pêş, divêt bêje kît bi kît ji hev de bêne xistin; bêî ko tîpeke kîtê jê bibe û bikeve xêzeke din. Mesela heke (nermijandin) kete paşiya xêzekê û tê de cih ne bû; ev bêje bi vî awayî tête birîn: (ner mi jan din) û ji van çar kîtan hin divêt bikevin paşiya xêzê û ên an a mayîn pêşiya xêza nû, bêî ko ji tîpên her çar kitan ne tu jî ji hev bibin.

### NAVDÊR

34 — Navdêr ew bêje ye ko keseki heywaneki an tişteki şanî me dide. Ji lewre bêjeyên Zîn, pismam, şêr, hesp, post, û kursî navdêr in. Ji ber ko ji van her şeş bêjeyan dido hin kesan, didowên din hin heywanan û didowên mayîn jî hin tiştan pêş me dikin.

C. A. BEDIR-XAN

Şanek — Di hejmara 28an de, di rûpelê yanzdehan de li serê stûnê nîşandekên niqteşaniyê hatine hejmartin. Di wê hejmartinê de « bihnok » hatiye ji bîr kirin. Me hêvî ji xwendevanên xwe heye serê vê stûnê bi awayê jêrîn biedilînin:

| | |
|---|---|
| ( . ) | Niqte |
| ( ? ) | Niqtepirs |
| ( ! ) | Niqtebang |
| ( : ) | Niqtecot |
| ( ; ) | Niqtebihnok |
| ( , ) | Bihnok |

# LA LÉGENDE
## DE MIR MOHAMMAD [1]

Mir Mohammad, prince de Botan, régna jusqu'en 1740. Il est resté célèbre dans la tradition locale, beaucoup plus à cause de ses chasses et de ses amours avec la fille du roi des péris, que de ses guerres. Un résumé de la légende de Mir Mohammad a déjà été publié dans le numéro 25 de «Hawar» (Bêriya Botan, notes).

On raconte que l'émir s'était épris de la fille du roi des péris. Il la rencontrait régulièrement dans une caverne de la montagne; il eut d'elle plusieurs enfants. Elle lui avait fait jurer de garder leurs relations secrètes. Or, un jour, le prince s'attarda au rendez-vous. Voyant la nuit venir, ses domestiques, qu'il avait quittés à quelque distance de la grotte, sous prétexte d'aller chasser seul, commencèrent à s'inquiéter. L'un d'eux partit à sa recherche et le trouva assis à l'entrée de la caverne, en compagie de sa maîtresse et de ses fils. Le valet tenta de se dissimuler, mais la péri l'aperçut. Elle crut que son amant lui avait manqué de parole, et disparut avec les enfants. Au même instant, le prince fut pris d'une fievre violente. Il mourut pendant que ses hommes le ramenaient à Djeziré.

Le numéro 26 de notre revue contient également un conte intitulé « Ehmedê Zeydan » où il est fait allusion aux relations de Mir Mohammad avec les génies: le héros de l'histoire relate, en présence de l'émir, les circonstances dans lesquelles il a été conduit à la cour du roi des péris, et comment il a cru le reconnaître parmi l'assistance. Le récit terminé, Mir Mohammad déclare au narrateur: « O Ahmadé Zaydan, celui qui était assis ce jour là sur le trône, à côté du fils du Roi des péris, c'était bien moi ».

Dans un article de la «Revue Patriarcale Syriaque» sur Basile Simon II (1939, no 6), nous trouvons encore une autre tradition relative à Mir Mohammed: « Basile Simon II, évêque de Tour Abdin, était très vertueux et très pieux. Il y avait à Bamenmen, chez Avdal Agha, un domestique syriaque qui désirait épouser sa propre cousine. Le prélat se refusait à bénir cette union irrégulière d'après la loi chrétienne. Le valet se plaignit à la femme de son maître, qui demanda à l'agha d'intervenir. Celui-ci eut beau faire, l'évêque ne consentit pas davantage au mariage. Avdal agha se mit en colère et envoya Basile Simon chez Mohammad beg Boti, prince de Djeziré, espérant que l'émir le ferait mettre à mort. Arrivé à Djeziré, le prélat fut introduit chez le prince. On lui donna une coupe de poison. Il fit le signe de la Croix sur le récipient, et but sans être incommodé. L'émir fut surpris; il fit appeler le domestique qui avait préparé le breuvage, et lui demanda s'il y avait vraiment du poison dans le verre. Sur la réponse affirmative de l'homme, on emplit de nouveau la coupe, et on la lui fit boire. Il mourut le jour même. Mohammed beg convoqua de nouveau

(1) Voir le texte original de l'article et des chansons dans la partie Kurd de ce numero.

l'évêque, et, dans l'intention de l'éprouver, lui ordonna de danser et de chanter. Il se refusa à danser, mais se mit à chanter en kurde le «Lavij» poëme qui décrit le jour du Jugement Dernier et les châtiments réservés aus pêcheurs. Le prince et ses courtisans furent profondément touchés par le chant du prélat, qui fut renvoyé à son village, comblé de présents ». (1)

Mir Mohammad beg était un véritable Nemrod, et il est surtout connu sous le nom de « seigneur des chasseurs». On lui amena un jour deux jeunes bouquetins mâles qui avaient été pris vivants. Il les baptisa Afeno et Hajale, et les apprivoisa. Lorsqu'ils furent gros, il leur rendit la liberté et interdisit de les tuer. Les deux animaux atteignirent rapidement une taille extraordinaire. Quelque années plus tard, le prince de Behdinan envoya à Mir Mohammad la dépouille d'un bouquetin dont les cornes avaient 7 empans de long. L'émir releva le défi et se mit en chasse, pour tuer une pièce encore plus remarquable. Il se rendit rapidement compte que, seul Afeno ou Hajale pouvaient lui fournir un trophée supérieur à celui que lui avait offert son voisin. La mort dans l'âme, il organisa une battue, tua les deux mâles, et fit présent de leurs têtes à l'Émir d'Amadiyé: on mesura les cornes de Hajale, elles étaient longues de 9 empans.

C'est cet événement que relate la chanson dont nous publions ici quelques variantes.

## I

Source: Hadji Ramazan Keri.

Mon coeur, malheureux, est tombé dans une embûche.

Mon bouquetin robuste paissait sur l'alpe haute,

Il s'abreuvait à la source de Cbkijen.

Mon coeur a la certitude que Mohammad beg, le seigneur des chasseurs, ne survivra pas:

Afeno est resté à Ferachin. (2)

Peine et chagrins cheminent en caravanes, la joie les a rejoints sur la route.

Je contemple les rocs arrondis des cîmes, une légère couche de neige blanche s'y étale.

Mon coeur a la certitude que Mohammad beg, le seigneur des chasseurs ne survivra pas:

Des présages se manifestent par le monde,

Ce monde de malheur qui pour nul n'est constant.

J'ai interrogé aujourd'hui les comptables pour savoir combien s'est écoulé de Novembre, et combien de jours en restent.

Novembre est fini, il reste trois jours et trois nuits de Décembre.

Mon coeur a la certitude que Mohammad beg, le seigneur des chasseurs, ne survivra pas:

Les bouquetins mâles dansent sur les rocs arrondis cîmes.

Je vieillirai, mais coeur brişé ne peut vieillir.

Bouquetin, malheureux bouquetin à la belle barbe, au nez busqué!

Mon bouquetin robuste paissait sur l'alpe haute,

Il s'abreuvait à la source de Chakh.

Mon coeur a la certitude que Mohammad beg, le seigneur des chasseurs ne survivra pas:

Au sommet de l'alpe haute, Afeno a tourné le dos aux pentes terrestres (1)

Un cri d'alarme a retenti sur les pentes, mais je ne sais qui l'a poussé.

La détonation d'un fusil résonne joyeusement aux oreilles de Mohammad beg.

Je ne sais si c'est celle d'un fusil rayé, d'une carabine, ou d'un fusil à pierre.

Mon coeur a la certitude que l'on a tué Afeno.

Hajale, le père des jeunes bouquetins mâles est blessé de quatre balles.

Je contemplais les hautes cîmes,

Comme aux premières lueurs de l'aube.

Douleur et chagrin sont venus camper dans un coeur blessé.

Moi, malheureux, je ne servirai d'émir ou de grand roi,

Autre que le prince, le souverain destitué(2).

## II

Source: Hadji Djendi, d'Ereh.

Bouquetin, malheureux buequetin, avec cette bouche et ce nez busqué!

Les chasseurs ont brisé les roce de Hendjé; ils ont gagné les pentes de Chakh.

Les poudrières de Mohammad beg, l'émir de Botan, sont d'or et d'argent.

Il en laisse pendre les pompons sur ses reins.

Je préfère à tout autres rendez-vous de chasse (3) celui de Stoun, au dessus de Derba Chekér,

(1) C'est le « Lavij » dont le texte et la traduction ont été publiés dans le No 25 de « Hawar ». D'aprés une autre tradition, l'émir aurait simplement prié l'évêque de chanter une chanson où il ne serait question ni de guerre, ni d'amour.

(2) Il a le pressentiment de la mort de Mohammad beg et se sent déjà en securité sur le terrain de chasse du prince.

(1) C'est à dire: est mort

(2) Allusion à Mohammad beg qui n'a plus longtemps à régner, ou à quelque autre prince de Botan?

(3) «Çeper» signifie littéralement affut cependant, lès «çeper» de Mir Mohammad étaient de véritables rendez-vous de chasse, comportant des pavillons dont les ruines subsistent encore de nos jours.

Mohammad beg, émir de Batan, est monté à cheval, avec une suite de valets et de domestiques, et Chero de Serkhanes, et Rasoul de Fenek.

Ils disent :« Nous allons tuer Afeno, nous enverrons sa tête au khan de Khoy (1).

Nous enverrons sa peau à l'Émir d'Amadiyé;

Nous enverrons sa chair au cadi de la ville, pour son souper.

Ces trois choses sont au nombre des merveilles du monde.

Je préfère à tout autre rendez-vous de chasse celui qui surplombe Devené.

Les poudrières de Mohammad beg, émir de Botan, sont d'or et d'argent, décorées à profusion.

Mon émir, tirer sur Afeno, fais gémir sa maudite femelle.

Bouquetin, malheureux bouquetin bouquetin des pentes de Tavi !

La pointe de tes cornes est fine, la racine en est épaisse.

Mon émir, détourne ton fusil de la femelle, vise le mâle robuste aux boucles dans le vent.

Que ne répondas tu à mes paroles!

Les bouquetins mâles descendent en file de Kureké Qaso, ils ont contourné les falaises du versant.

Nos chasseurs sont novices, c'est pourquoi ils se vantent de la qualité de leur pulvérin.

Je préfère à tout autre rendez-vous de chasse celui de Darkavoté.

Le fusil de Mohammad beg, émir de Botan, tire deux coups par deux coups.

Je ne servirai prince ou seigneur autre que Mohammad beg, émir de Botan.

III

Dans la pièce qui suit, il est fait mention de la tombe de Mohammed beg. Sans doute, le poème a-t-il été composé après la mort de ce prince. D'autre part, il y est fait allusion à Abou Zayd de Balak, chasseur réputé qui accompagnait d'ordinaire l'émir. On retrouve le nom de ce personnage dans un grand nombre de chansons et de récits. On raconte qu'il ne survécut que peu de temps à son maître.

(1) Khoy: ville du Kurdistan iranen.

Douleur et chagrins cheminent en caravane ; la joie les a rejoints.

La brûme couvre les hauts sommets,

Où s'étendent de vastes plans sans neige.

Mohammad beg le seigneur des chasseurs ne survivra pas.

D'extraordinaires merveilles se sont manifestées par le monde.

Je préfère à tout autre rendez-vous de chasse celui de Darkavot,

D'où volent les balles une par une, deux par deux.

Je ne servirai émir ou seigneur.

Autre que Mohammad beg, prince de Botan.

Bouquetin, joli bouquetin !

Les poudrières de Mohammad beg ont des franges qui tombent sur ses cartouchières.

Détourne le guidon de ta carabine du front de Afeno et de Hajale, vise le mâle caché derrière les cognassiers.

Il me faut aujourd'hui un fusil dont le canon et la crosse soient aussi gros que ceux du fusil de Mohammed Paşa.

Je veux un mortier de poudre, écrasée par deux amoureux.

J'irai au rendez-vous de chasse de Mohammed beg, tuer Afeno et Hajale, les mâles robustes aux boucles dans le vent.

Les nuits d'hiver sont longues et le sommeil me fuit.

Le temps a passé, les Pléiades sont maintenant au Sud,

Les blessures sont profondes, ne les exposez pas à la brise ni au froid.

Les nuits d'hiver, brèves ou longues, le sommeil me fuit.

Le temps a passé, les Pléiades sont au Sud,

Les blessures sont profondes, ne les exposez pas à la brise ou au froid du matin.

J'ai contemplé une haute cime. Que je souffre !

Douleur et chagrins campent dans un coeur blessé.

Après Mohammed beg, je ne servirai prince ni seigneur.

Je servirai ce roi, cet émir, ce souverain destitué.

J'ai bien examiné le monde, combien je suis perflexe !

Afeno et Hajale, les pères des jeunes bouquetins,
Ont contourné l'affut de Mohommad beg, le siegneur des chasseurs.
Si vous ne connaissez pas la tombe de Mohammed beg le seigneur des chasseurs,
Allez au séminaire de l'hippodrome, voir sa stèle.
Arc et flèche et fusil y sont sculptés.

J'ai bien examiné le monde. Qu'il m'est amer!
On entend faiblement les coups de fusil qui partent de l'affut de Mohammed beg, le seigneur des chasseurs.
Si vous ne connaissez pas la tombe de Mohammed beg; le seigneur des chasseurs,
Allez au séminaire qui se trouve à l'extrémité de la place,
Regarder sa stèle funéraire.
Il a couché Hajale en joue.

Bouquetin, robuste bouquetin!
Afeno et Hajale paissent sur la chaise d'Awal.
Ils sont descendus s'abreuver à la source de seigneur.
Hélas, hélas Mohammed beg va mourir et tourner le dos aux pentes terrestres.

Aujourd'hui, le chasseur de chez mon père est sorti seul,
Il est monté jusqu'à l'affut de Karé, qui surplombe Devené.
Le mâle appelait la femmelle. Debout, allons à la danse!
Mais Abou Zayd de Belek est à la mort.

Bouquetin! Quelle embûche on t'a dressée!
Afeno et Hajale paissent sur la chaise d'Awal.
Ils étaient descendus s'abreuver à Hertchekin.
Alors, j'ai compris que Mohammed beg, le seigneur des Chasseur; ne survivrait pas.

## IV

Source: Rasul agha, chef des Jéliyan.

J'ai contemplé Mohammad beg, sa parure et son élégance:
Tes poudrières sont décorées d'or, de franges et de pompons.
Détourne la balle de ton fusil de la femelle, son mâle est debout derriére les cognassiers.
Tu as répondu à tout ce que j'ai dit.
Le troupeau des bouquetins mâles est descendu du ravin de Qaso et a contourné le Pelengé Zérin.
Nos chasseurs sont novices pour ce qui est du pulvérin: ils se vantent d'être pareils au Balaka Rache (1).

* * *

Nous avons dit plus haut qu'il existait de nombreuses anecdotes au sujet des chasses de Mohammad beg; c'est par l'une d'elle que nous concluerons cet article.

Un jour, l'émir et sa suite étaient allés dans la montagne. les chasseurs s'étaient répartis dans les affuts. Deux frères, appartenant à la tribu des Keran s'étaient installés ensemble. Le prince avait bien recommandé à ses hommes de ne pas tirer tant qu'ils n'entendraient pas la détonation de son fusil.

Le jour se leva. L'émir aperçut un gros ours qui se dirigeait vers l'affut des deux frères. Il arriva à porté de leurs fusils, mais ils ne tirèrent pas. Mohamad beg bouillait d'impatience. Enfin l'ours contourna l'affut et disparut. Le prince se leva et se dirigea vers les deux frères, escorté de ses valets. Il était très en colère et se disait: « Je leur ferai couper la tête, pour avoir laissé échapper cet ours! ». Cependant, lorsqu'il se fut approché, il aperçut un spectacle qui l'emplit d'étonnement: l'ours était là, étendu à terre, les pattes liées à l'aide de ceintures et de turbans.

Voyant l'animal venir à eux., les deux frères s'étaient concertés. Que faire? Il ne pouvaient tirer, puisqu'ils n'avaient pas encore entendu le fusil de leur maître. Ils ne pouvait non plus laisser la bête leur passer sous le nez. Ils avaient donc posé leurs fusils, et tombant sur l'ours à bras raccourcis, ils l'avaient terrassé et ficelé avec leurs ceintures et leurs turbans.

Il racontèrent à lémir ce qui s'était passé. Celui-ci fut si content d'eux qu'il les nomma, l'un «Fil» (éléphant), et l'autre, «Fengenoz». Il leur dit ensuite: « Je vous fais chefs des Keran, car la dignité de chef doit revenir aux braves.»

R. LESCOT

(1) Montagne du Botan.

# Kitêbxana Hawarê

Hejmar:

1 — Rêzana Elfabiya Kurdî C. A. Bedir-Xan.
2 — Rupelnine Elfabê C A. Bedir-Xan.
3 — Dilê Kurên Min Dr. K. A. Bedir-Xan.
4 — Bîyişa Pêxember. Bi Kurdiya dumilî, bi dîbaca C. A. Bedir-Xan
5 — Nivêjên Êzediyan bi dibaca C. A. Bedir-Xan.
6 — Mektûb ji Mistefa Kemal paşê re C. A. Bedir-Xan
7 — Mesela Kurdistanê Bazîl Nîkîtîn
8 — Ji mesela Kurdistanê C. A. Bedir-Xan
9 — Elfabeya Kurdî Dr. K. A. Bedir-Xan
10— Xwendina Kurdî Dr. K. A. Bedir-Xan
11— Elfabeya min Dr. K. A. Bedir-Xan
12— Dersên Şerîetê Dr. K. A. Bedir-Xan
13— Çarînên Xeyam Dr. K. A. Bedir-Xan
14— Proverbes Kurdes. Medhelokên Kurdî. Lucy Paule Margueritte û Emîr. K. A. Bedir-Xan Paris - 1937
15— Le roi du Kurdistan. Qralê Kurdistanê. Emir K. A. Bedir-Xan û Adolphe de Falgerolle. Paris - 1937
16— Der Adler von Kurdistan. Eyloyê Kurdistanê. Prinz K. A Bedir-Xan û Herbert Örtel Berlîn - 1937
17— Der Schnee Des Lichtes. Berfa Ronahiyê. Şihrên Kurdî Prinz. K. A. Bedir-Xan û Dr. Curt Wunderlich Berlîn - 1937

# Kiryariya Hawarê

| | | | |
|---|---|---|---|
| Salî | 500 | Qirûşên | Sûrî |
| Şeşmehî | 300 | Qirûşên | Sûrî |
| Sêmehî | 200 | Qirûşên | Sûrî |

Xwedî û gerînendeyê berpirsiyar: Mîr Celadet Alî Bedir-Xan. Şam—Sûriye
Directeur Propriétaire: Emir Djéladet Aalî Bedir-Khan. Damas—Syrie

SAL 9
HEJMAR 30
SÊŞEMB
1 TÎRMEH 1941

ANNEE 9
NUMERO 30
MARDI
1 JUILLET 1941

# HAWAR

## KOVARA KURDÎ ★ REVUE KURDE

### TÊXISTIYÊN VÊ HEJMARÊ



ŞAM—1941
ÇAPXANA SEBATÊ

SAL 9
HEJMAR 30
SÊŞEMB
1 TÎRMEH 1941

# HAWAR

ANNEE 9
NUMERO 30
MARDI
1 JUILLET 1941

KOVARA KURDÎ ✶ REVUE KURDE

## TEFSÎRA QURANÊ

90 - Ew ji dexsa xwe baweriya xwe bi Qurana ko Xwedê şandiye xwar ne anîne û bi vê yekê dilên xwe bi tiştekî erzan firotine.

Xwedê ji kerema xwe, ji bendeyên xwe ji kîjikî re bixwaze; Kitêba xwe jê re dişîne xwar. Erin li ser ernekê gihaşt û bi ser wan de ket û ji bona kafiran ezabekî giran heye û ew wan diêşîne û riswa dike.

91 - Gava ji wan re tête gotin; baweriya xwe bi Qurana ko Xwedê şandiye xwar bînin; ew dibêjin: Em baweriya xwe bi Tewratê tînin ko ji me re hate dahatin û kitêbên din inkar dikin. Lêbelê Quran heq e; û tesdîqa Tewratê dike. Pêxemberê min, ji wan re bêje: Heke hon bawermend in; we çire pêxemberên Xwedê kuştin.

92 - Mûsa ji we re bi delîlên eşkere û bi mûcizan hati bû, piştî ko Mûsa çû çiyayê Tûrê, we ji xwe re golikek anî û jê re ibadet kir; hon zalim in.

93 - Dîsa bînin bîra xwe... We ji me re sond xwar, me çiyayê Tûrê di ser serê we re da sekinandin û me ji we re got: Vê kitêba ko em didin we bi xurtî û dilpakî ji xwe re bibin û guhdariya emrên wê bikin. We got: Me bihîst û em guh na dine te. Ev gotina he ji devê wan derket; ji ber ko ew keti bûn kufrê û hêvîna golikî di dilê wan de bû.

Pêxemberê min... Ji wan re bibêje: Heke hon ji dil bawermend bûna, ma kengê baweriya we bi berdana Tewratê û bi ibadeta golikî, emrî we dikir.

94 - Pêxemberê min.. Ji wan re bibêje: Heke mîna gotina we bihuşt ji terefê Xwedê ve, bi tenê ji we re ye û heke hon di vê gotinê de dilrast in; de ji xwe re mirinê bixwazin, ta ko hon lez û bez bigehin wê bihuştê.

95 - Herweki destê wan bi xwîna pêxemberan sor û xemilî ne; tu cara dilxwaziya xwe bi mirinê nîn in; Xwedê halê zaliman dizane.

96 - Tu dibînî ko ew ji mişrikan bêtir ji jiyînê hez dikin, hinik ji wan minêkarê emrekî hezar salî ne, lê ew, bi vê jiyîna dirêj xwe ji ezêb dûr na xin. Xwedê bi emelên wan dizane.

97 - Pêxemberê min... Ji dijminên Cebraîl re bêje: Cebraîl e ko ev Kitêb bi destûra Xwedê ji dilê te re nazil kiriye û ev Kitêb tesdîqa rastiya Kitêbên din dike û ji mirovên bawermend re mizgîniya riya rastî û bihuştê dide.

98 - Xwedê ji her kesê ko neyartiya wî û melyaket û pêxemberên di wî û Cebraîl û Mîkaîl dike dixeyide; Xwedê dijminê kafira ye.

99 - Me ji te re ayet şandine xwar, yên ko nîşanî emrên Xwedê dikin; bi tenê mirovên kafir baweriya xwe pê na yênin.

100 - Her cara ko cuhiyan sond xwar û bext dan, birekî ji wan paşê bextê xwe reş kirin; ji ber ko piraniya wan baweriya xwe bi Tewratê ne anîne.

101 - Gava ji wan re, ji nik Xwedê pêxemberek; cenabê Mihemed hat û wî hikmên Tewratê tesdîq kir; birekî ji wan xudankitêban, Tewrat avêtin pişt guhê xwe, heta ko bikarin Quranê û pêxemberîtiya cenabê Mihemed inkar bikin. Tewratê ev tesdîq dikirin.

Qey wan nę dizanî bû ko Tewrat kitêba Xwedê ye...

102 - Û cuhî ketin pey Iblisên ko di wextê Siltan Silêman de sihr dixwendin û pê emel dikirin. Siltan Silêman bi xwe sihr ne dikir, ne bû kafir; lê Iblîs bûne kafir, ji ber ko Iblîsan xelk hînî sihrê dikirin.

Sihr di bajarê Babilê de, ji du melaiketan re, ji Harût û Marût re hati bû dahatin; lê gava wan her du melyaketan xelkê hînî Sihrê dikirin; berî dersdanê ji wan re digotin: Em ji nik Xwedê fitnekar in, yên ko hînî sihrê dibin, dibin kafir. Bi vî awayî Xwedê dilpakiya evdên xwe diceribandin, yên ko ji hînbûna sihrê xwe didan paş, bawermendiya xwe xuya dikirin û yên ko hînî sihrê dibûn, bextreşî dikirin û dibûn ji kafiran.

Xelk ji Harût û marût tiştine welê dielimin ko bi têsîra wan, jin û mêr ji hev dibin. Gelî bawermendino.. Zererê sihrkaran, destûra Xwedê nîn be, na gehe tu kesî.

Bi hînbûna sihrê tu qenci ne digiha wan, wan bi tenê pê xisar didît û cuhiyan qenc dizanî bû ko mirovên sihrkar û sihrzan ji buhuştê bê behr in.

Ya rast ev e ko, wan nefsa xwe bi behayekî erzan difirot. Heke wan bizaniya ....

103 - Heke wan baweriya xwe bi Quran û bi pêxember bianiyana û xwe ji cuhîtî û sihrê dûr bikirana, sewaba Xwedê û xeyra wê didîtin. Heke ew bîrewer bûna ....

104 - Gelî bawermendino .. Ji pêxemberê xwe re ( raina ) me bêjin; cuhiyan wisa digot, di vê gotinê de mana dijûnê heye; lêbelê jê re ( inzirna) ango mêze li me bike bibêjin û ji dil û can guhdariya emrên pêxemberê xwe bikin... Ji bo kafiran ezabekî dijwar heye.

105 - Ji xudankitêban yên ko kafir bûne û mişrik na xwazin ko ji bal Xudayê we, ji we re, qenciyek bête xwar; lê Xwedê rehm û piyariya xwe ji kê re dixwaze dide û wî pê kamiran dike, kerem û comerdiya Xwedê mezin e.

106 - Gava em ayetekê hiltînin, an paş ve dibin, an li şûna wê ayeteke din têxin, em hercar ayeteke hêja mîna ya ko hatiye hilanîn, an yekê jê çêtir dişînin xwar. Ma tu ni`zanî ko Xwedê bi her tiştî dikare !..

107 - Ma tu ni zanî ko xudawendî û sermiyaniya erd û ezmanan ji Xuda re ye û ji wî pê ve tu kes ni kare sermiyan û arîkarê we bibe.

108 - Ma hon jî dil dikin; ji pêxemberê xwe tiştine welê bipirsin, her wekî cuhiyan ji Mûsa pirsî bû. Yên ko baweriya xwe bi kufrê diguhêrin, riya rastiyê winda dikin.

109 - Ji xudankitêban gelek hene ko dixwazin — niho ko hon êdî misilman bûne — we ji riya Xwedê bixirînin û ji nû ve, we bikin kafir. Ew ji dexsa xwe wisa dikin, herçend ji wan Tewratê de xwendiye ko pêxemberîtiya Mihemed heq e, û dînê wî rast e. Guh medin wan û dev ji wan berdin, heta ko Xwedê emrê xwe li ser wan çi ye, ji me re bide zanîn. Xuda bi her tiştî dizane.

110 - Nimêja xwe bikin, zekatê bidin û herçî qenciya ko hon ji bona xelasa ruhê xwe dikin û pêş xwe ve dişînin, honê sewaba wê li nik Xwedê peyda bikin.

Xwedê her tiştê ko hon dikin dibîne.

111 - Û cuhiyan got: Cuhî û File bitenê dikevin buhuştê. Ew ji xwe re wisan dixwazin. Pêxemberê min... Tu ji wan re bêje: Heke hon di vê gotinê de rastdil in, kanî hiceta we.

112 - No ... Ne bi gora gotina wan e. Heçî ko bi dilpakî rûyê xwe dane Xwedê û dest bi qenciyê kirine, li nik Xwedê sewaba wan heye û ji bo wan tirsa ezabî nîne û ew xemdar na bin.

113 - Cuhiya got: Baweriya filehan ne li ser tiştekî bi esas e, filehan got: Baweriya Cuhiyan ne li ser tiştekî bi esas e; lêbelê her diwan jî kitêbên xwe dixwendin.

Mişrik û dînnezanan jî di heqê misilmaniyê de weke wan got. Xwedê li ser wî tiştê ko wan lihev ne dikir, di roja piştdawiyê de hikmê xwe wê bide.

---

Ji bona Tefsîra Quranê K. k. ( kerem kin ) û li hejmarên Hawarê 27, 28, û 29. binêrin.

# HEDÎSÊN

## CENABÊ PÊXEMBER.

### REHMET Û SILAVA XWEDÊ LÊ BE

186 - Pêxember li neviyê xwe nêrî û got: Ji boyê ko emê malê xwe ji we re bihêlin, em xwe desteng dikin; ji boyê ko emê bikarin we bi xwedî bikin, em ber xwe di-kevin û tirsonek dihin; û heke yekî dirêjî we kir ji bona parastina we em çavsor dibin; hon ji rûh û bihna Xwedê ne.

187 - Gava Xwedê qenciya hakimekî dixwaze miroveki qenc jê re dike wezîr, heke hakim pêkanîna qenciyekê ji bîra kir wezîrê wî tîne bîra wî, ko hakim dest bi qenciyekê kir, wezîr arîkariya wî dike, lê heke Xwedê serfiraziya hakimekî na xwaze; miroveki xirab dike wezîrê wî, ko hakim kirina qenciyekê ji bîr kir wezîr wê na yêne bîra wî û heke hakim dest bi kirina qenciyekê dike wezîr nabe arîkarê wî.

188 - Mîna mirovan dixwim û vedixwim û weke wan radibim û rûdinim; ez jî mirovek im û nefsmeziniyê na kim.

189 - Nîşanê minafiqan sisê ne, gava dipeyivin derewa dikin, gava wada xwe didin lê diqulipin, ko mirov pişta xwe dayê bêbextiyê dikin.

190 - Ko hon hatine vexwendin, herin.

191 - Ji malê xwe berê nefsa xwe bi xwedî bike, paşê arîkariya mirovên di xwe û di pişt re arî ciran û hevalên xwe bike.

192 - Berê ji xwe re, pê ve meriyên xwe re, pê ve dora xwe re.

193 - Heke dilê hakim li peyayên wî xira dibe; peya mifsid dibin.

194 - Di roja piştdawiyê de, li ba Xwedê mirovên xirabtir ew in ko du rû û riyakar in.

195 - Heke keseki gulek da we lê vemegerînin, kulîlk ji buhuştê derktine,

196 - Heke ji we sê mirov bi rê ve diçin bila yekî ji wan serekitiya ên mayin bike.

197 - Her vexwarina ko serxweş dike heram e.

198 - Mirovên bikêrnehatî pirsên ne qenc dikin ta ko zana pê şaş bibin.

199 - Ez mizginiyê didim we û hon jî, ji yên di pê xwe re mizginiyê bidin; heçî ko baweriya xwe bi yekîtiya Xwedê anîne wê bikevin buhuştê.

200 - Dîn ji sê texlît mirova zererê dibîne; ji zanayên bi tevdan, ji hakimên bi zilm û zinat û ji xebatkerên nezan, yên ko bê rê û tertîb dişixulin.

201 - Ko zanîn hate ji bîr kirin xira dibe, ko nehêja hînî wê bûn winda dibe.

202 - Erna Xwedê ji helalan berdana jina ye.

203 - Helaliya ko Xwedê jê dixeyide berdana jina ye.

204 - Xwedê ji mirovê ko di neyariyê de har e; hez na ke.

205 - Bikêrî bikêrnehatiya werin.

206 - Ho mirov, nanê te besî te ye, pê qail na bî; ne bi malê hindik û ne bi ê pir qîma xwe tînî, ko tu saxî, xwarina te ji têrî te dike, bila dinya ko bi eqlê te dikene û te dixapîne xira bibe.

207 - Kurê jinikekê ji miletê wê ye.

208 - Mizgeftên xwe bê xeml û rewş, lê gund û bajarên xwe bi xeml û zînet ava bikin.

209 - Cebrail hat û gote min: Her wekî dixwazî bijî dawiyê bimirî, ji kê dixwazî hez bike dawiyê jê veqetî, herwekî dixwazî bike tu ê pê berpirsiyar bibî, serfiraziya bawermenda ew e ko bi şev bi ibadetê mijûl dibin û hewcedarê xelkê na bin û çavê xwe na din ber deriyê xelkê.

210 - Bi malê sêwiya ticaretê bikin ta ko malê wan bi dana zekatê kêm ne be.

211 - Heke hon dixwazin dilê we nerm û çak be û îşê we here serî, li ber sêwiya bikevin û ji wan hez bikin, xêrxwazê wan bibin, dilê wan xweş bikin û ji xwarina xwe bidin wan; pariyê deyê xwe bidin devê wan.

212 - Pez bi xwedî bikin, bi xeyr û bereket e.

213 - Hon dizanin pisîtî çi ye? Pisîtî ewe ko mirov gotina yekî ji êdin re dibêje; ta ko ew li hev kevin.

214 - Dev ji heramiyê û ji heramê xelkê berde ta ko tu serfiraz bibî, bi mal û rizqê xwe qîma xwe bîne ta ko tu dewlemendirê mirovan bibî, qenciyê bike ciranê xwe ta ko bawermend bibî, tiştê ko ji bona nefsa xwe dixwazî ji xelkê re jî bixwaze ta ko misilman bibî! Pir me kene dil pê dimire (Mirovên bêeql pir dikenin).

215 - Ji Xwedê bitirse, tu qenciyê kêm me bîne, gava avê ji bîrê dikşînî ko ava setila te rijiya setila hevalê te ew jî ji we re qenciyek e, xweşkirina dilê xelkê jî qenciyek e, kubariyê me ke, Xwedê ji nefsmezinan hez na ke, heke kesek bi kêmasiyekê ko tu jê bêrî yî qedrê te dişkînine, tu eyba wî me de rûyê wî, berde bila ew pê gunehkar bibe û sewaba kirina te ji te re bimîne; dijûna me ke tu kesî.

# KESKESOR

Di sala 1925an de bû. Wê salê, ez hîn nû diçûm dibistanê, lê dibistana tirkan.

Di meha Sibatê, Sibata dinoka welatê jorîn de, di gelek cihan de, berf wek dêliya bûkekê ji rûyê erdê hildihat û geşiya hêşinahiyê û kulilkên Biharê, bi tevî tazehiya wan pêş me dikir. Goya zivistan jî bi hatina tıştekî hêja hesiya bû, û zû xwe da bû paş û şûna sermê, berf û hagerê da bû şirgermiya tava Biharê.

Di van rojan de bû ko li bajêr tevlîheviyek hebû: Di malan de mezin ji ker ve diştexilîn û bi kêf û bi ken bûn. Jin bi tirs û telaş bûn û bi zarokan re pir mijûl ne dibûn. Esker bi zor diketin xaniyên Kurdan mitralyoz datînin serê banan.

Li dibistanê, şagirdên mezin digihan bev û pir tişt digotin: « Şer ... kurd ... tirk ... standin ...» Me piçûk, me dida pey wan û bêî ko bîr bibin bi van nûçeyan kêfxweş dibûn. Lehîstik û ders bê rexbet bû bûn. Pirsên: « şer ... top ... tifing ... kuştin ... hatin » em serxweş dikirin.

Mamosteyên ko giş tirk bûn bêzar xuya dikirin; di dersxanê de gêj dibûn û bê hemd dipeyivîn. Êdî stranên tirkî ne dihatin gotin û ala tirkan ne dihate çikandin ser dibistanê.

Tirs û tevger roj bi roj meztir dibû: Memûr xwe tavêtin mala mezinên kurd û bext ji wan dixwestin.

Esker top û mitralyozên xwe berdidan û direviyan. Mezinên bajêr yên ko berê berberî bi hev re dikirin li bev dihatin û çek didan mirovên xwe.

Dibistan hati bû girtin û mamoste xwe veşarti bûn. Zaroyên deh, panzdesalî xencer û şejderb hildigirtin. Pirsa « têñ » ji her devî derdiket; her kes bê sebir bû ...

Rojekê: « Hatin ... nêzik bûn ... kurd hatin..» digotin. Xort û mêr bi çekên xwe ve, bi dahol û zirne hin siwar, hin peya bi hezaran û bi dengên her bijî kurd ... her bijî kurdistan ... her bijî serbestî ... ji bajêr derketin û çûn pêşiya leşkerê kurd yê ko li her derê dida pey t.... û ji dûr ve tirs dixistin dilê wan. Jin û zaro derketi bûn ser banan: hinan stranên şêr digot, hinan govend digirt.. Zaroyan debançe berdidan û besp dibezandin. Herkes ji kêfxweşiyê mest û gêj bû bû.

Behsa rojeke nû û jîneke geş dikirin. Piştî demekê siwar bi kum û destmal, bi şal û şapik wek birûskan ketin bajêr û rast çûn seraya hikûmeta t...

Li serayê tişteki rengîn xuya kir. Wê roê hinek baran hati bû; di piştre bi derketina rojê keskesor bi ezmanan keti bûn. Me got qey yek ji wan danî bû serayê.

Xelk li dora serayê kom dibûn. Em zaro jî çûn: ew tiştê rengîn di ser serê me re sekinî bû. Lê ew ne keskesora ezmên bû. Ez bêsebir bûm ... li bavê xwe geriyam. Leşker rêz girti bûn, stranek digotin, çavên wan ên tûj têrken bûn. Min ew li ser hespê dît, ez çûm cem; wî ez danîm ber xwe. Min jê pirsî: « Bavo ev çi keskesor e li ser serayê?»

— Ev ala me ye; kurê min! Ev şan û şerefa miletê kurd e!

— Berê yeke sor hebû; ew çi bû bavo?

— Ew ya neyaran bû. Neyar bi zor keti bûn welatê me. Em kurd îro wan ji erdê xwe derdixînin û dibin xwediyê wî. Ha ji te re aleke piçûk! Wê deyne ser dilê xwe! Hejî wî bike û ji bo serfiraziya wê bixebite!

Ez bi gotinên bavê xwe bû bûm sermest. Dilê min hildavêt. Bavê min ez maç kirim û ez danîm erdê.

*
* *

Heya ko ew keskesor li sera û kelata bajêr pêl dida dinê bi me re tim Bihar bû, bihuşteke rastîn. Lê Bihara me zû wergeriya Paîzeke reş û bihuşta me bû dojeheke dijwar.

Piştî çend mehan rewşa bajêr guherî. Tirseke mezin ket şûna geşî û rahetiyê. Ji bêbextiya kurdan û ji ber ko binekê wan ji nezaniyê arîkariya dijmin kiri bûn, kurd dişikestin. Mirovên xwenda behsa bêbextî û bêrûmetiya hin kurdan dikirin Ev hal pir dom ne kir! rojekê dijminan dora bajêr girt û bi topan li me xist û gotin teslim bin. Lê herçend mêrên çekhilgir ne ma bin jî; jin, zaro, pir û nexweş ketin pêşiya dijmin. Hîn xweş tête bîra min: wê rojê şerekî no û xwîndar çêbû. Kurdan arîkariya dijmin dikir. Gelek ne ajot dijmin weke gurên birçî ketin bajêr... hin di ci de kuştin, zaro û jinên avis dan ber sûngiyan, kal bi dar ve kirin. Hinên din ji bi zar û zêçên xwe ve avêtin cihên nenas û nependî.

Ala rengîn, şan û rûmeta me, çirandin avêtin ber lingên xwe, pê lê kirin û li şûna wê ya xwe, ya xwînxwaran danîn. Zman û stranên kurdî bend kirin û tirseke dijwar xistin dilê xelekê.

*
* *

Ev şanzdeh sal in ko ev hal di kurdistanê de hikimferma ye. Û dîsa şanzdeh sal in ko

## DILJANIYA HACO AẌA

REHMETA XWEDÊ LÊ Û LI MIRIYÊN MALBATA WÎ BE

Der sala hezar û neh sed û çil,
Bîst û didiwê Nîsana têrgul;

Axê me Haco ê dilovan,
Ẍemxwarê feqîr û jarên kurdan.

Yezdanê mezin bi rehmeta xwe,
Dil şad kirî bi ceneta xwe.

Bîst û sisiyê meha me gotî,
Tîra felekê dilê me sotî.

Tabûa giha bû ser mezarê,
Rengê xwe dida riwê Biharê.

Ezmanê Cizîrê bû bû tarî,
Wê gavê ji ewran xwîn dibarî.

Ew dem te digo ew e qiyamet,
Zahir ko me dîn du sed elamet.

Em ẍerqeyî pêlê hesretê bûn,
Sewda ji serê me wê demê çûn.

Xortê me ketin deravê kalan,
Bi hêl û qiwet misalê dalan.

Ser ta bi qedem hemî birîn bûn,
Têk da bi tebayî sernexwîn bûn.

Rûdênê keça hemî wekî co,
Bê eql û hewes ji derdê Haco.

Şev ta bi seher melûl û gêj in,
Xwîn in ko ji çavê reş dirêjin.

Çerxa felekê neyar û bêbext,
Doza te çi ye, bi min re her wext?

Nahêle bi dilxweşî ko rûnin,
Nisxa ẍereza te em bixwînin.

Serdarê ciwan û xort û kalan,
Bê sûc û guneh te kir bi talan.

Em mane di hesret û xemê da,
Tîra ko li dil ketî te lêda.

Bes ko kedera te em helandin,
Can û cegerê me tev kewandin.

Qehr û ẍezeba xwe bes birêje;
Cewra te li me kirî ji mêj e.

Celwa ẍezeba xwe dagerîne;
Sûcek me tu nîne ev çi kîn e.

Qîrên û hewarên xort û bûkan,
Lerzîn dikete dilê biçûkan.

Fîẍan ji me çûne banê barî,
Hêja bi me re dikî neyarî.

Ko rêçeşinasê miletê kurd,
Ẍemgîr li ser wî miletê kurd.

Haco tu bi navê kurdewarî,
Razayî li benda efwa barî.

Emrê te meger giha bû şêstî,
Nazdarê welat tu zû nivîstî.

Wextê te ne bû, niha tu razî,
Doza me bi dilxweşî bixwazî.

Insaf bike ev ne edl e, zilm e;
Rojek te ne kir kerem digel me.

Bistanê bi hendesê te danî,
Guhdarî hene bi dergevanî.

Pêta li dilê te ê birîndar,
Xortê me ji xewnê kirine hişyar

Der heqê te de nizam çi bêjim,
Bê sebr û qerar û dîn û gêj im.

Feryad dikin ji bê mecalî,
Hêstir diwerin ji her du alî.

Tirba te li pêşberê me her dem,
Pê sebr dikin heta xweş in em.

Ger çendî qewî li me nihan bû,
Navê te î xweş ji nû eyan bû

Namî bes e, ey şivanê derdan,
Hêja bi xweşî dikî xeberdan.

Wek mirẍê hezîn bi davê dilxweş,
Rûne bi tenê li kuncikî reş.

Çendî ko bibêjî, hem binalê,
Heta bigihînê dewrê salê.

Dîsa tu nizanî ev çi hal e,
Derdê di dila ye, bê mecal e.

Lê hêvî dikim ji Xwahê gewre,
Vî ewrereşî li me bigore.

Daxwaz li me êdî zû xuya bê,
Şêrîn e welat niha qe nabê.

Ey Xwahê mezin tu çendî pakî,
Haco tu bi rehma xwe şa kî.

Kêmayî hebin jî, lê nebîne,
Pir cewr û cefa ji bo me dîne.

EHMED NAMÎ

---

ala rengîn di dilê min û di dilê hezar xortên kurd de pêl dide.

Ji bo anînciha wesiyeta bav û kalan, vekirina tola wan û daçikandina ala xwe ser kelat û çiyayên Kurdistanê em kurd li benda Bihara xwe ne; li benda baraneke bi keskesor....

NÛREDÎN ÛSIF

## DERDÊ MILETÊ ME

### ( Ez dibêjim ), ( Nema dikim )

Berî ko ez dest bi meqseda xwe bikim, ez dê çend pirsan ji bo brayên xwe yên ko li Sûriyê rûniştî bikim.

Gelî biran Hawar derket, gaziya miletê kurd. Heya kari be li Kurdistanê derkeve mehvanê we ye. Divê kurdên ko li Sûriyê rûniştî ne Hawarê bijînin ; bi her hawayî alîkariya wê bikin ko kari be gaziya xwe bibe serî.

Derdê miletê me çi ye? Ew çira heya îro ûsa maye? Bi min ev her du pirs bo me pir xedar in. ( ez dibêjim ) çi ye ; dema ko yekî ji me, ev pirs got tu dêbêjî qey ayeteke qurane ye ; jê venagere.

Mezin û piçûk xwenda û nexwenda giş welê ne. Gelî birano ma ne ûsa ye? ev pirsên te ne rast in, welê çênabe. ( Ez dibêjim ) xelas bû. Tu çi bikî feyde nîne. Pir caran heye ko ew baweriya xwe tîne ko fikra wî ne rast e, lê carekê ( ez dibêjim ) gotiye bi şûn da venagere.

Divêt hêdî hêdî weke miletên din xwe hîn bikin ko veke wan em jî bêjin ( em dibêjin ). Kînga me vaya pêk anî karê me bêtir dê bimeşe.

Ew jî çawa dibe? Kînga ko çend heval gihiştin hev li ser fikrekê xeber dan fikra ko li piraniyê de ma wê fikrê qebûl bikin bi dû piraniyê de herin. Heya îro çend civata kurdan çêbûne. Giş ji bo ( ez dibêjim ) ne çûne serî.

Gelî şêx û melan, mezin û xwendewarên kurdan! ev kêmanî di we de jî hene. We ewçend mal û milkê xwe, îstiqbala xwe ji bo xelasa miletê knrd feda kir. Ma hon nikarin dev ji van her du pirsan berdin? ji we dengek derkeve kurdên nezan jî wê bidin dû we.

Pirsa din jî ( nema dikim ) e. Ev pir tiştekî ecêb e ; bi yekî re ser fikrekê xeber bidî ; tucaran bê camêrî li te venagerînê. Pir caran dengê xwe nake, meriv dibê qey fikra me qebûl kiriye. Lê ne ûsa ye. Ji xwe ra riya revê çêkiriye Qenc hal ; hevalê te ye ; ne hat ne bi te re ye ; ev dîsa ne tiştek e.

Car heye bi her awayî hevalên hev, bi sondekê mezin jî girêdayiyên hev in û li ser fikrekê jî li hev hatine, lê saeta ko şixul nêz dibe ; divê dest bi karê xwe bikin ; yek ji wan radibe dibêje ( nema dikim ).

Keko ûsa nabe, em hevalên hev bûn me sond xwarî bû. Pir merîv hene ji vî rûyî dê bixesirin. Îşê miletekî jî bo viya dê bi şûn de bikeve. Tu çi bikî feyde nabe. Qîma wî nayê ; dibê ( nema dikim ).

Eviya pir caran hatiye serê me. Ez ji şêx û melan, mezin û zanayên kurdmancan hêvî dikim ; bira bixebitin vê adeta nerind ji nav miletî rakin. Weke miletên din em jî xweyiyê pirsa xwe bin. Bira di şêwrekê da rind bifikirin.

Heke pirseke wan hebe wê gavê bêjin. Lê kînga ko soz dan serê wan jî here divê pirsa xwe bibin serî. Di mêranî û di camêriyê de weke miletê kurd kêm peyda dibin.

## DIVÊ EM BIBIN YEK

Ji paşa û begên kurdan,
Di vê rê yek ne bû hişyar.
Ji bo serbestiya kurdan,
Ji bo wan qet yek ne bû Xemxwar.
Hemî talanker û mêrkuj,
Li ser wan dijminê xwînrêj.
Melan êriş birin Emro,
Heta Zeydo kirin serdar.
Dirist bû kuştina kurdan,
Di şer'a şêx û mamostan.
Beg û axan di nav gundan,
Digotin her em in xunkar.
Yên xwenda li bajaran,
Meger zana dibû, dîsa.
Di bin destê neyaran da,
Dima ew bê gem û hevsar.
Bi zazî geh bi tazî geh,
Bi tirkî, geh bi tatîtî.
Mijûl bûn ehlê bajaran;
Gelê kurdan ne bû yekzar.
Bi çil gundan hebû navek,
Wekî xuşnav û mirdasan;
Ne yek berk û ziman û dil,
Bi vî rengî mirin yekcar.
Li hawêr dijminê bedxwaz,
Ji hev em raqetandin tev;
Heye ko ew ji hev dîr e,
Kirin dijmin kirin xwînxwar.
Edib û şairên kurdan,
Bi biskên şê mijûl ma bûn;
Yekî wek min hebûna; lê
Di nav wan de dima bê çar.
Zeman sed firsetên hêja,
Belaş dan, kes ne bû bêjê.
Heta hasil giha Mûsil,
Cegerxwîn nû dikê Hawar.

CEGERXWÎN

# KULÎLKÊN

## KO JI KUDISTANÊ TÊN

Her sal kulîlk li derekê li hev diciviyan û biserhatiya xwe ji hev re digotin. Kîjan emelekî baş kiri be jê re mikafatek didan.

Îsal civata wan li cem krîzantêmê [1] û dî bin riyaseta wê de bû.

Roja civînê kulîlk hemî hati bûn; ji sê kulîlkan pê ve: Nergis, Beybûn û Xecxecok. Ji ber ko wext dereng bû bû li benda wan ne sekinîn. Her yekê ji wan, bi dorê çiroka xwe got:

Berî hemiyan gulê dest pê kir û got:

— Min îsal tiştekî hêja ne kiriye. Bi tenê ez ketim dibistanekê û min dersxana zarokan xemiland û zarok pê kêfxweş kirin.

Kulîlkan gişan, bi devekî, got:

— Aferîn; ev tiştekî hêja ye.

Dor gihaşt rîhanê. Ew got:

— Ez li dawetekê hazir bûm û min sînga xanimeke xweşik xemiland.....

Kulîlkan ne hişt ko rîhan gotina xwe biqedîne, pê kenîn û henekê xwe pê kirin.

Lalê got:

— Tiştê ko min îsal kiriye ev e: Berî çend rojan ez li ber serê xortekî biyanî û nesax sekinîm, û çiqas ji min hat min demên wî ên paşîn geş û sivik kirin.

Kulîlkan tev de got:

— Pir baş, pir baş, ev tiştekî hêja ye, divêt mikafat ji te re be.

Heçî benefş e, got:

— Ez li taştêkê hazir bûm. Mîr û mezin li dora sifrê rûniştî bûn, pev dişêwirîn; gotina wan li ser şer û xerabiyê bû; û......

Kulîlkan ne hişt ko gotina xwe temam bike; lê rabûn û gotin:

Bes bibêj; kulîlka felaketê!...

— Bi vî hawayî her yekê çiroka xwe got, Kulîlkan dest bi şêwra xwe kir gelo mikafatê bidin kê? Çaxa ji derve dengek hat; deri vebû û her sê kulîlkên din: Nergis, beybûn û xecxecok, westiya û xwêhdayî ketin hundir û gotin:

— Em dereg man, qisûra me efiw bikin. Em ji dereke gelek dûr, ji çiyayên Kurdistanê tên. Li wê derê em rasti sê cendekên xortên kurd hatin. Ew di riya welat û miletê xwe de bi şeref û rûmet hati bûn kuştin, em li ber wan sekinîn, me ji wan re sih girt heta ko hevalên wan hatin û ew veşartin.

Kulîlk tev de rabûn; ew rakirin ser milên xwe ji wan re çepilkan li hev xistin û gotin:

— Her bijin, her bijin; mikafata vê salê ji we re ye.

TELET QEDÛR

HEC ELÎ BEGZADE

(1) Texlîlek kulîlk e; xelkê Diyarbekrê jê re « pal » ji dibêjin.

Dinê pê zane ko kurd weke şêr in; tucaran xwe ji mirinê nadin alî. Lê çi feyde tucaran ji gotina wan bi yek nabe. Em nikarin baweriya xwe bi hev bînin pişta xwe li hev girêdin. Bo vê ji li bindestê biyaniyan da mane.

Heke em dixwazin bi ser xwe û xweyiyê welatekî bibin divê em van tiştan ji nav xwe rakin.

Kurdino destên xwe bidin hev ta ko em kari bin dilxwaza xwe bibin serî.

BEDRÎ CEMÎL PAŞA

## REWŞA DINYAYÊ

Ji îro û pê de Hawar di her hejmara xwe de xwendevanên xwe li ser rewşa dinyayê wê serwext bike; û tiştên ko di nav mehê de çêbûne bi urtî ji wan re bide zanîn.

Ji bo destpêkirinê emê bi şûn de vegerin û çavên xwe li bûyerên ko ji destpêka şer hetanî îro çêbûne bigerînin.

Di şerê 1914an de zora elmanan çû bû û elman şerpeze bû bûn. Tu mistemlike di destê elmanan de ne ma bû, û hin birên welatê wan jî bi ser dewletên din ve kiri bûn.

Piştî ko Hîtler hikim xiste destê xwe, xebateke zor xebitî, yekîtiya Elmanyê û Nemsê pêk anî; birên welatê xwe yên ko jê hati bûn birîn bi şûn de vegerandin, dewleta Çekoslovakyê ji ortê rakir û ew erd kire du wilayet û xiste bin himayeta Elmanyayê. Ji xwe erdê vê dewletê beriya şerê 1914an di destên Elman û Nemsê de bû.

Êdî mesela Danzigê ma bû. Danzig di behira Baltiqê de bendereke elmanî ye. Sondxwariyan piştî 14an ew bender da bûn ser Polonyayê û ji Elmanyayê veqetandi bûn. Erdekî teng, weke lîwanekê diket navbera Denzig û erdê Elmanyayê. Ev lîwan jî di destê Polonyayê de bû. Ji xwe Polonye jî wek Çekoslovakyê pistî şerê mezin bû bû dewlet. Beriya hingê Ûris, Elman û Nemsê erdê Polonyê lêk vekiri bûn. Ji Danzigê pê ve hin erdên elmanî jî keti bûn nav tixûbên dewleta Polonyê. Lê elmanan hêj qala wan ne dikir.

Elmanan dixwest di navbera tixûbên xwe û Danzigê de rêkê çêkin û ew rê bi milkane àidî wan bibe; wek erdekî elmanî. Polonyê pê qail ne dibû. Ingilîz û Firensiz jî keti bûn navê.

Danzig berçend erdekî polonî be jî bi awakî xweser dihate idare kirin. Jê re digotin bajarê serbest. Hikim di destê walîkî de bû û ew walî civata miletan tayîn dikir. Meclisek ya Danzigê hebû. Xelkê Danzîkê herçend tev de elman bûn jî lê hemî ne ji tayê naziyan bûn. Lê elmanê nazî, hin bi hin piraniya meclisê xisti bûn destê xwe û guh ne didan hikûmeta Polonyê. Hebû ko nazî

rojekê dest deynin hikûmetê ; xwe bi serxwe îlan bikin û erdê danzigê bigihînin Elmanyayê.

* *
*

Ji bayê Ewropayê bihna barûdê dihat. Tirs hebû ko şer çêbibe; şerekî mezin, wek şerê 1914an. Ji wextê mesela Çekoslovakyayê bêtir.

Li gora tifaqekê, Polonye biketa şer diviya bû Frensiz û Ingilîz li pişta wê rabin. Ingilîz li hevalbendan digeriya. Heyeteke ingilizî çû bû Moskoyê û bi zimamdarên Ûris keti bû mizakerê. Lê ji nişkekê ve wezîrxariciyê Elmanyê, Von Ribentrop bi balafirekê kete paytextê Ûris û bi dewleta Ûris re miahedeke nelihevxistinê imza kir. Heyeta ingilîzan bi şûn de vegeriya Londrê.

Lê ji milê din hevalbendê elmanan ê kevin, tirk rû jê bada û berê xwe da ingilîzan. Pêşdetir tirk ketin tifaqa frensiz û ingilîzan; û di vê babetê de li Enqerê di navbera ingilîz, frensiz û tirkan de miahedêk hate imza kirin.

Her du aliyan xwe kar dikir; şer nîzing bû bû. Polonyê ciwab da Elmanyê. Li ser vê yekê li yekê Îlona sala 1939an de, rojeke Înê ordiwa elmanan dirêjî Polonyayê kir. Elmanan bi awakî nû şer dikir û dirêjkî diketin welatê neyarên xwe. Poloniyan herçend dest biri bin ji xwe şikestin. Elman li nehê Îlonê gihaştin paytextê Polonyê û li 21ê mehê polonî bê qeyd û şert teslîm bûn.

Zimamdarên wê revîn Romanyayê; jê çûn Frensê û jê jî berê xwe dan Ingilterê.

Elman û Ûris Polonye di nav hev de leva kirin û bi vî awayî dewleteke mezin bi sih û du milyon rûniştiman ji hev de ket û ji ortê rabû.

Herçi frensiz û inglîz li pişta Polonyê rabûn û li siseyê Îlonê daketine qada şer lê arîkariya Polonyê ne kirin. Ji ber ko di bejê re nikarî bûn bigehin Polonyê. Di rojên pêşin de digotin ko Ingillere bi stola xwe û di riya behirê re wê bête hawara Polonyê. Lê ev proje jî ne çû seri û zora Polonyê di nav sê heftan de çû.

* *
*

Ingilîzan esker şandin Frensê û her du hevalbendan bi hev re xeta Majino asê kir. Xeta Majîno li ser tixûbên elman û frensizan de asêgeheke ecêb bû. Drêjahiya wê 150 kîlomêtir. Asêgeh ji rûyê erdê bêtir li bin erdê bû. Li bin erdê qişleyine mezin û depoxaneyin hebûn. Hin topên wê jî danî bûn bin erdê. Wextê şer de ew derdiketin rûyê erdê; bera dijmin didan û dîsan dadiketin binê erdê.

Piştî şerê Polonyayê hela Bihara 1940î tiştekî bi ehimiyet çênebû. Di qada şerê roava de, yanî di tixûbên elman û frensizî de topçiyan li hev dixist; û balafirên nêrevaniyê erdên hev keşif dikir.

Bi tenê di warê siyasetê de bûyereke girane hate pê. Li Berlînê elman, talyan û japonan tifaqek imza kir û jê re tifaqa sêbendîn gotin. Li gora madeke wê tifaqê heke ji dewletên ko îro şerê elmlan û talyanan dikin pê ve dewleteke din dirêjî elman û talyanan kir hingê japon jî wê bikeve şer û şerê wê dewletê bike.

Herkesî got ew dewlet Emêrîka ye; ji ber ko Emêrîke meyildariya domokrasiyan, yanî ingilîz û frensizan dikir. Ji milê din Elmanye bi lihevhatinên iqtisadî navbera xwe û Ûris xurt dikir. Her texlît madeyên hov ji cem Ûris dihatin Elmanyayê.

Ingilîzan jî herwekî di şerê 1914 an de kiri bû ebloqe îlan kir; yanî ji hemî dewletên dinyayê re dan zanîn ko her texlît dan û standina ticarî bi elmanan re bend e. Li ser vê yekê û hetanî îro jî ingilîz vaporên dewletên bêteref jî li behirê digirin; wan velo dikin û heke di nav wan de tiştin ji bo Elmanyê dîtin wan û vaporan jî zeut dikin.

Di vê navê de Ûris dirêjî Fenlandiyê kir, lê îşê xwe ne bir serî. Paşê bi têkiliya elmanan Fenlandiyê stoyê xwe ji Ûris re xwar kir û tiştê ko jê dixwest da ê.

* *
*

Sala 1939an bi vî rengî qediya û bişkojên Bihara 1940î bi şerê Norvêjê vebûn.

Bêdiro, li 9ê Nîsana sala 1940î, rojeke Duşembê elmanan dirêjî Norvêj û Denimerkê kirin. Elmanan digot: « destên me de isbat hene ko ingilîz û frensizan karê xwe kiri bûn bavêjin ser Norvêjê û me di behira Baltiqê de hebis bikin, me rê ne da wan û pêşî ji wan stand ».

Denîmerkê dest hilnanî û teslîm bû. Norvêjê li ber xwe da. Ji ber ko di navbera Norvêj û Elmanyayê de behir heye; elmanan eskerên xwe di bejê re nikari bûn bînin Norvêjê. Diviya bû di behir û ezmanan re bihatan. Ingilîz û frensiz hatin hawara Norvêjê; stolên wan û ya elmanan li hev xistin; lê elman bi vapor û bi balafiran derbas bûn û di rojekê de ketin paytexta Norvêjê.

Qral û hikûmet xwe dan aliyê bakur, esker dan hev; û xwe pêkanîn. Inglîz û frensizan esker derêxistin bejê û digel norvêjiyan bera elmanan dan. Elmanan herçend ber bi bakur ve diçûn, ewçend ji îşê wan zehmet dibû. Bakurê Norvêjê tev de çiya ye û lê de ne rêhesin ne jî şose hene; û heta dawiya Bihara paşin berf û qeşa ji erdê ranabin.

Şerine dijwar di navbera elman û sondxwariyan de çêbûn. Lê gelek ne ajot, eskerên ingilîz û frensizan digel qral û hikûmeta Norvêjê ji erdê Norvêjê rabûn û vegeriyan cihên xwe.

Elmanan bi şerê Norvêjê bakurê Ewropê xisti bûn destê xwe û keti bûn pêşberê girava Ingilterê. Bi ketina elmanan Norvêjê destên ingilîzan ji hesinê Îsvêçê dibûn. Ji ber ko hesinê Îsvêçê di Norvêjê re diçû Ingiltirê.

* *
*

Dîsan elmanan da zanîn ko dilê ingilîz û frensizan heye di Belçîke û di Holandê re bên û li elmanan xin. Elmanan rê ji van her du dewletan xwest ko di erdên wan re derbas bin û bikevin biwara dijminên xwe. Wan her du dewletan çewab da elmanan.

Li 10ê Gulana sala 1940î elmanan dirêjî Belçîke û Holandê kirin. Van her du dewletan arîkariya ingilîz û frensizan xwest. Frensiz û ingilîz çûn hawara wan.

Hin erdê Holandê ji behirê nizimtir e. Holande rabû behir berda ser erdê xwe. Lê tu havil jê çênebû. Li çardehê Gulanê yanî piştî çar rojan Halande teslîm bû. Qrala wê digel hikûmeta xwe çû Ingilterê.

Belçîke 18 rojan şer kir û li 28ê Gulanê bi destê qralê xwe teslîmî elmanan bû. Lê hikûmeta Belçîkê çû Frensê û jê jî Ingilterê.

Ji Flandirê eskerên elmanî keti bûn navbera ordiwa sondxwariyan û ew ji hev veqetandi bûn. Piraniya ingilîzan li milê bakur ma bûn; ew ji Dûnkerkê li vaporan siwar bûn û vegeryane welatê xwe.

Elmanan çend rojan bibna xwe da û li 5ê Hizêranê şerê Frensê ê mezin dest pê kir. Elman ketin Parîsê; hikûmeta Frensê çû Bordoyê.

Dijmin roj bi roj; saet bi saet dihate pêş. Reîscimhûr û reîswezaretê Frensê istifa kirin; û hikim xistin destê Merêşal Pêten. Merêşal li 22ê Hizêranê bi elmanan re mitarekêk çêkir.

Bi vî awayî şerê qada roava jî temam bû û ji roja şerê Belçîk û Holandê heta çekdaniya frensiz û elmanî, ev şer 32 rojan dom kir.

* * *

Heta vî çaxî Elmanyê bi tenê şer dikir. Lê hevalbendêke wê hebû: Îtalye. Îtalye heta hingê ne keti bû şer. Lê piştî ko frensiz şikestin elman ketin Parîsê û berê xwe dan behira spî Îtalye jî rabû û kete şer. Talyan di hin cihan de sê çar kîlomêtir ketin erdê Frensê; û digel elmanan, bi Frensê re mitarekêk imza kirin.

Piştî şerê Frensê peravên Ewropayê ên roava ji bakurê Norvêjê heta tixûbên Spanyayê tev de keti bûn destê Elmanyayê. Elman ji wan peravan radibûn, diçûn Ingilterê li bajarên Ingilterê dixistin, nemaze li Londirê.

Carina balafirên elmanî, bê etlahî deh diwanzdeh saetan li Londrê didan. Hin taxên Londrê ji binî edim kirin. Di perava manşê de hin bajar yekcar hilweşiyane û bûne xirbe. Ingilîz jî diçûn Elmanyayê û li bajarên wê dixistin; lê di destpêkê de ne bi xurtiya elmanan. Lêbelê piştî ko Emêrîkê ji wan re balafirên mezin û dûrger şandin ingilîz jî bombardimanên xwe xurt kirin.

Piştî şerê Frensê her kesî digot elman wê dirêjî Ingilterê bikin û derbasî erdê wê bibin.

Ingiltere giraveke mezin e; çarnikarên wê behir in û di tu derê re nagihe beja Ewropayê. Di navbera Ingilterê û Frensê de behireke teng heye jê re Manş dibêjin; frehiya wê 35 kîlomêtir in. Guman bû ko elman di wê û di ser wê avtengê re derbas bibin û herin Ingilterê vegirin. Ji xwe elmanan gelek esker û topên mezin anî bûn peravên Manşê û bi wan topan li bajarên Ingilterê ên peravîn dixistin.. Lê elmanan ev tişt yanî derbasbûna erdê Ingilterê hetanî îro jî ne ceribandine.

Şerê elman û ingilîzan di qada şerê roava de di ezmanan û di behiran de çêdibin.

Balafirên hev li bajarên hev dixin. Ji milê din li behirê şerekî zor çêdibe. Ji wî şerî re şerê Etlantîkê dibêjin. Etlantîk behreke mezin e, dikeve navbera Ewropa û Emêrîkayê. Noqar û balafirên elmanî di wê behirê de vaporên ko ji Emêrîkê çek û cebirxanê ditînin Ingiletrê dirêjî wan dikin; û carina wan bin av dikin.

* * *

Piştî mitarekê kete navbera frensiz û ingilîzan jî. Ingilîzan bi hênceta ko frensiz stola xwe teslîmî elmanan bikin çûn li du benderên frensizî xistin. Di wan ber du benderan de yanî Dekar û Merselkebîrê de cenkeştiyên frensizî li ser lengerê bûn. Ingilîzan çend cenkeştiyên frensizî bin av kirin û ji 1500î bêtir eskerên frensiz di wan şeran de batine kuştin.

Piştî midekî general Degol di bin himayeta cenkeştiyên ingilîzî de avête ser Dekarê. general Degol dikir Dekar zemt bike û tê re bikeve Efriqa frensizî a bakur. Lê eskerên Merêşal ew û ingilîz bi şûn de vegerandin. Û Ingilîz û Frensiz qutbiriya xwe ji hev kirin. Sefîrên hev ji paytextên hev bi şûn de kişandin.

* * *

Elmanan bihna xwe dida. Dor gihaşti bû talyanan. Herwekî kurdmanc dibêjin: Heçî dikeve govendê divêt çepilkên xwe bibejîne.

Talyanan li Efrîqa bakur, li Binxazî û Trablis-

# TARÎXA

## KURD Û KURDISTANÊ

### — 3 —

Di benda berî vê de, me li ser bakur û roavayê sinorê Kurdistanê zanîna xwe gotibû. Di vê bendê da min dil heye li ser hejmara gelê kurd bipeyivim. Çiqas ko der heqê hejmara kurdan tiştekî rast û dirist di destê me da nîne ji, mafir ko di vî warî da pir û hindik axaftin bûne û ev axaftin ne di cihê xwe da ne: divê em xwe jê bi şûnda nedin. Di van gotinên bûyî da, eger qesdên siyasî tine bûna, belbî jî me di vî warê nexweya da tu tişt ne digot û dihişt roja wê. Lê fêlneçakiya hin kesan em di vî warî da jî dane axaftin.

Li ser hejmara gelê kurd, xasma piştî şerê mezim pir gotin bûne. Lê tuyên wan nizîkî rastiyê ne hatine kirin. Piraniya nivîsanên ko di vî warî da bûne, bi qesdên siyasî ne. Ên mayîn ji, ji van nivîsanan hatine girtin.

Dema min çavên xwe di kitêba Emin Zekî begî da li benda hejmara gelê kurd gerand, ez mat mam. Hejmara kurdan di sê mîlyonan da heya pênc mîlyonan hatiye nîşan dan !.. Erdekî wek kurdistanê fireh, bi sê, çar, pênc mîlyon nefs çawan tijî dibe?! Tiştekî li ber çavan e ko, Kurdistan ji erdê pir miletên dorhêla xwe mezintir e. Bi avabûnê û xelkên tê da, ji wan ne kêmtir e.

Sebebên ko hejmara kurdan pê kêm hatiye nîşan dan dido ne:

1 — Heya van salên paşîn eşîrên kurdan yekcar bindestî hikûmetên dor xwe ne bû bûn. Ji ber vê, ji sedî şêst-heftiyê kurdan ne keti bûn nifûsa hikûmetan. Bi vî awayî,

dikarî bûn hineki xwe ji şerê van hikûmetan biparêzin. Wek dayina leşker û peran. Yên di deftera nifûsa hikûmetê da çiqas hindik bûna, leşker û dayina ko bidana ji ewçend hindik dibûn. Ji bo vê yekê, heya mikûna kurdan bebûya xwe ne dixistin qeyda hikûmetan.

Ji bo serwextkirina xwendevanan ez tişteki ko min bi çavên xwe dîtiye bêjim. Hinga xwendevanan dikarin di vî warî da hikmê xwe bi reheti bidin.

Xweş di bîra min da ye ko, di navbera salên 923-924an da hikûmeta tirkan qanûnek bi derêxisti bû. Li ser vê qanûnê, serê her penci hezar nefs şandiyek (meb'ûs) dê bihata bijartin. Serekên eşîran dixwestin ko qeza me « Gexte » bi serê xwe şandiyeki biderîne. Lê hejmara qeza me di deftera hikûmetê da ne digehişte bist hezarî. Ji bo wê, sî hezarê mayî li ser eşiran belav kirin. Hingê, her yeki ko me dixwest navê wî têxe deftera nifûsê, herwekî here ber mirinê, digot:

— Mafir ko honê navê min têxin nifûsa tirko, qe ne kurên min mexin ê.

Kurd ewçend ji nifûsê direvîn. Piştî ko tirko serê eşîran bi destên hev û din dane pelaxtin; di sala 928an da hejmartinek tevayî çêkir. Di vê hêjmartinê da, hejmara qeza me Gextê giha bû heftê û çar hezarî. Hîn jî, cih cih mirovên ko xwe an zarokên xwe ne dabûn nivisin pir bûn.

2 — Yek jî, mirovên ko der heqê hejmara kurdan nivîsan kirine, xwe spartine proknivîsên (pelêjmar) hikûmetên ko welatê kurdan êxistine bin destên xwe. Ev hikûmetên han berî her tiştî dixwazin hejmara gelê kurd hindik rave bikin; da ko kurd li ber çavê cihanê mileteki bê ser û ber bêne nasîn. Di vê rê da kurdên bajarî, ji xwe dihesibinin. Çima ko hînî zmanê wan bûne!.. Pir ecêb e ko fêr bûna zmanên biyanî ji miletên din ra hiner têtê zanîn; lê ji bo me kurdan, vacayî xelkê, ji miletê ko zmanê wî hîn bûne têne hesibandin!.. Zhar, bextereşiya ko dibên qey ev e...

Ji xwe vê paşiyê, tirk hebûna kurdan di welatê xwe da inkar dikine, û navên wan tirkên çiyayî danîne!..

Kurdên Tirkiyê, milyon û nîvek û du milyon hatine nîşan dan. Yeki ko ser û berê vê hêla kurdiştanê dîtî, nema dikare xwe li ber vê texminê ragire. Li ser teşkîlata vê dawiyê, hevde wilayetên kurdan di bin destê tirkan da ne, ko navên wan ev in:

« Bayezîd, Hezarom, Erzincan, Wan, Hekarî, Sêrt, Mardîn, Diyarbekir, Bidlîs, Mûş, Xarpêt, Dêrsim, Meletî, Meraş, Entab, Kilis û Riha ».

Di sala 1928an da gava hejmartina tevayî çêbû bû, hejmara wilayetan yek bi yek di rojnameyên tirkan da belav kiri bûn. Hingê min hejmarên van hevde wilayetên kurdî da bûn ber hev, tevayiya wan pênc milyon û sî hezar derketî bû.

Di hejmartina 1928an da xwe ne nivîsandina pir kurdan me li jor gotî bû. Hikûmeta tirkan jî, serwextî vê yekê bû bû. Ji lewre di sala 1940î da car din hejmartineke teva-

xerbê, ji sê sed heta çar sed hezarî, esker heşidandi bûn. Li 15ê Îlona 1940î ordiwa talyanî dirêjî Misirê kir û di axa Misirê de Sîdî-Beranî zemt kir, û li wê derê sekinî. Ji milê din talyanan li roavayê Efriqeyê Somalistana ingilîzî jî vegirtin.

Lê li 9ê Kanûna pêşîn sala 1940î ingilîzan dirêjî talyanan kir, talyan ji Sîdî-Beranî derêxistin; ketin erdê wan û ew ajotin heta Bînxaziyê. Talyan perîşan bûn, vegeriyan heta Trablisxerbê. Li roava jî talyan bêgav man ji Somalistanê rabûn. Ingilîzan dirêjî Erîtrê û Hebeşistanê jî kirin. Talyan di wan deran de jî şikestin. Ingilîzan erdê Êrîtrê û Hebeşistanê vegirtin; destên talyanan de tiştekî hindik ma.

Li 28ê Ciriya-pêşin sala 1940î talyan dirêjî Yewnanistanê jî kir. Ji ber ko Yewnanistan dewleteke kiçik e; herkesî digot ko zûka zora wê wê biçe. Lê welê ne bû. Yewnanistan bi xurtî li ber dijminê xwe sekinî. Ingilîzan bi stol û balafirên xwe arîkariya wê kir û Yewnanan talyan bi şûn de vegerandin û nîzingî nîvê erdê Ernewidlixê ji talyanan zemt kirin.

* * *

Elmanan berê xwe da bû Balqanan, û berî her tiştî destê xwe avêti bû Romanyayê; erdekî têr zad û genim û cihê petrolê

Mecaristan û Birxaristan; ev her du dewletên ko ji destpêka şerî ve meyildariya Elmanyayê dikir, ev jî li Romanyayê rabûn û erdên ko Romanyê piştî şerê 1914an ji wan standi bûn jê xwestin û bi arîkariya Elmanyayê ew erd jê standin.

Qralê Romanyayê terka welatê xwe da û digel dostika xwe Madam Lepeskû, revî çû Spanyayê. Kurê wî rabû ser textê bavê xwe; lê hikim kete destê generaleki elmanperwer, Entonesko.

Ingilîzan jî di Balqanan de xebateke zor dixedixebitîn û dikirin dewletên Balqanan bêxin tifaqa xwe. Lê xebata wan ne çû serî; û pey hev Romanye, Mecaristan û Slovakye ketin tifaqa sêbendîn; yanî tifaqa elman, talyan û japonen.

Tirkiya ko ji destpêka şerî ve hevalbendê ingilîzan bû xwe tev ne dida, bi gotin hevalbendiya Ingilterê dikir, û wer şanî dida ko heke agirê şer bi Balqanan ket hingê wê dest bibe xwe.

Eskerê elmanan keti bûn Romanyayê û hati bûn Tixûbên Birxaristanê. Herkesî digot ko elman

yî çêkir. Xweya ye ev hejmartin ji ya berî wê, qenctir hatiye ko hejmara welatê tirkan ji panzde milyonan hilda hevdehan.

Min gelekî xwe êşand ko hejmara van wilayetên kurdan, dîsa wek cara berê li ser rojnameyan têxim destê xwe. Lê, mixabin ko westa min a di wê rê da vala çû. Lê qet şik tê nîne ko, ji van her du milyonên zêdebûyî, teqez milyonek yê van hevde wilayetên kurdan e. Çima ko di hejmartina sala 1928 an da, çend êrdimên welêt qada şer bûn ko hejmartin di nav xelkê van êrdiman da ne bû bû.

Ji milê din; bi qasî sî hezar sirgûn tevî zarokên xwe, û ewçend jî hepsî di welatê tirkan da hati bûn hejmartin. Di hejmartina 1940 î da, hepsî û sirgûn vegerî bûn welatê kurdan. Herçend êrdimên ko, ji dest şerên di nav da ne keti bûn jmarê vê carê hatin hejmartin. Bi ser da, vê carê wek cara berê kurd, ji qeydkirina navên xwe û zarokên xwe ne direvîn. Ji ber van sebebên jorîn, eger ji nav her du milyonên zêde, me yekî wî kurd hesibandiye; divê texmina me di cihê xwe da be.

Yek ji, em ji bir nakin ko di nava bajar û sinorên wilayetên Hezarom, Erzincan, Meleti, Meraş û Entabê da, ji sedî nîsbetek tirk heye.. Lê hemberê van tirkan, kurdên me ên Qers, Zara, Qoçgirî, Stenbol, Edene û deşta Heymanê, li ser tirkan têne hejmartin; ko evana me ne xisti bûn ser wan pênc milyonan. Gava êm hejmara van kurdên di nav wilayetên tirkan da bidin ber tirkên li ser sinorê wilayetên kurdan tevî ko van berhevdan 40-50 hezari ji kurdan kêm dike] hejmara wan hevde wilayetan hemî kurd tên hesibandin.

Kurdên Tirkiyê ko ji şeş milyonan ne kêmtir in, milyon û nivek û du milyon hatine nîşan dan. Li ser vê mentiqê; gava biyaniyan an nivîsevanên hikûmetên doraliyê kurdan, tevayiya gelê kurd bi sê-çar milyonan texmîn kirin, divê em ecêbmayî nemînin.

Di nav van hevde wilayetên Kurdistana Tirkiyê da, hejmara wilayeta min Meletiyê bi tenê (534,0000) derketi bû. Ev wilayet, herê liwayeke Xarpêtê bû. Lê îro bi hejmara xwe, mezintira wilayetên Kurdistana Tirkiyê ye. Hemî nivîsevanên ko li ser welatê kurdan peyivine, kesî ji kerema xwe ev wilayet naniye ser zarê xwe. Xweya ye ko wê li ser welatê tirkan dihesibînin. Di vî warî da, bê ko ji me xelkên wê bipirsin; li cem xwe bi dayîna wilayeta me ji tirkan ra comerdiyeke baş dikin. Ev comerdiya ko bê haya me ye; nizam çiqas di cihê xwe da ye!

Ez ko kurdekî welatî me, û welatê xwe tevî xelkên wî çêtirî biyaniya dinasim, hejmara kurdên di kurdistanê da pirtirî diwazde milyonan texmîn dikim. Berî çil salî şairê kurdan Hecî Qadirê Koyî ko piraniya Kurdistanê geriyaye; ew jî bi diwazde milyonan texmîn dikiye. Heke çiqas piştî Hacî Qadir kuştin û mirin di welatê kurdan da çêbûne jî, tovên kurdan ên xurt û bi reşek, ev valahiya han ji mêj va tijî kiriye.

OSMAN SEBRÎ

---

di Birxaristanê re direjî Tirkiyê bikin, li Tirkiyê xin û di Tirkiyê re bên heta qenala Swêşê; û derbasî Misirê bibin.

Lê Bihara sala 1941ê şer ne di erdê tirkan, lê di erdê Yûgoslavan de dît.

Li didowê Adarê birxar jî ketin tifaqa sêbendin û di roja wê de elman derbesî Birxaristanê bûn û gihaştin tixûbên Tirkiyê û Yewnanistanê. Tirkan xwe tev ne da, û vêca got: Heke pê li erdê me kirin emê şer bikin.

Talyanan şerê yewnan û ingilîzan dikir. Lê di her du qadan de jî dişikest; çi Balqanan çi Efrîqê.

Elmanan di Balqanan de herçî dewlet bene hemî jî xisti bûn bin destê xwe; ji Yûgoslavyê û Yewnanistana ko şerê talyanan dikir, pê ve.

Li 25ê Adarê, piştî xebateke zor, Yûgoslavye jî, bi şertê ko eskerê elmanan di erdê wan re derbas nebin; ketin tifaqa sêbendîn.

Lê ingilîz û emerîkanî di paytextê yûgoslavan de dixebitîn. Piştî du rojan hikûmeta Yûgoslavyayê guherî; wesiyê text û wezîrên ko tifaq imza kiri bûn, tev de revîn û çûn Yewnanistanê. Hikûmeta nû qralê hevdesalî rakir ser text û dest bi eleyhdariya elmanan kir. Di kûçeyên Belgradê de timobîla sefîrê elmanan sekinandin li rûyê sefîr tif kirin û li wî xistin; û direjî hin elmanên din kirin. Bi vî awayî siyaseta elmanan di Yûgoslavyê de şikest.

Ingilterê û Emêrîkê nav di Yûgoslavyayê didaa. Ji xwe ingilîzan ordûke mezin anî bûn Yewnanistanê, û piştî ko Yûgoslavye li Elmanyê qulibî ingilîzan eskerên xwe di Yewnanistanê de xurt kirine. Emêrîkê jî karê xwe kir ko ji Yûgoslavyê re çek û cebirxane bişîne.

Lê li 6ê Nîsanê elmanan avêtc ser Yewnanistan û Yûgoslavyayê. Balafirên ingilîzî çûn hawara Yûgoslavan jî, û bi bêriceta ko balafirên elmanî ji balafirgehên Birxaristan û Mecaristanê radibûn; balafirên ingilîzî li hin derên wan welatan jî xistin. Ji xwe ingilîzan ji roja ko ew dewlet keti bûn tifaqa sêbendin qutbiriya xwe ji wan kiri bû.

Şerine no di wan welatan de çêbûn. Yûgoslavyayê ji hefteke bêtir xwe ne girt; teslim bû, qralê wê ê ciwan çû Felestinê. Şerê Yewnanistanê

## BI XWEHÊN GUHDERZ RE

Min temaşa Sorgula me dikir. Dengekî birîna min der da û got:

— Bavo! ev çi ye?

Min serê xwe hilda û got ê:

— Hawar e.

— Hawara kê ye?

— Hawara kurdan e.

— Heya niho çira gazî ne dikir?

— Ko hate xwendin, tête zanîn.

— De bixwîne

Piştî ko min ji benda sê tarixên Hawarê neh deh rêz xwendin; pirskera min got:

— Bavo! tê bîra te, pêrar di kitêbeke kurdî da te xwendi bû:

« Hişyar mebe niho ne qenc e »

« Landik ji te re bizane genc e »

« Bê xew mebe paşiya wê renc e »

« Binve kezba min binve lo lo! »

Çire çaxên xewê ji jiyîne nayên hajmartin.

— Bi Xwedê min şerm kir ko çêliyên heft, heşt salî qenc û neqenc, bi bihîstinê dizanin û ji bir nakin; û ez bi çavên xwe dibînim û paşê.....

Pê bistekê, min lê vegerand û got:

— Belê tên hejmartin; lê kitêb ne mîna merî ne. Ji lewra rojên xewa wan ne lê ye.

— Nexwe em nehêlin Hawar rakeve.

— Belê wer divê.

Yeke dî got:

— Ma emê çi bikin?

— Divêt em pir bixwînin û binivîsinin. Kitêbên ko di destên me de ne paqij hilînin; ji bona ko em bikari bin, şûna çay û qehwê pêş nas û dostên xwe bikin û bi hev ra bixwînin.

— Bavo! ev pir şerm e; çawan nas û dost bên û bê çay û qehwe rabin, herin.

— Kurê min şerma mezin ew e ko mirov nezanê xwendin û nivîsandina zmanê xwe be; nezan be. Nezanin hene çar rojan çay û qehwê didin mêvanên xwe. Lê te dit neyar rabû û mal talan kir û xewedi bê çay û qehwe hişt. Lê xwendin û zanîn nayêne talan kirin; ew her û her yên me ne.

RASTEDER

---

bêtir dom kir. Digel vê hindê heta dawiya Nîsanê elmanan erdê Yewnanistanê, digel giravên wê, ji Giritê pê ve, tev de vegirtin. Ingilîzan eskerên xwe ji Yewnanistanê bi şûn de kişandin û anîn Misrê.

Êdî talyan jî keti bûn erdê Yewnanistanê, û birek ji erdê Yûgoslavyayê bi ser erdê xwe ve kiri bû.

Bi vî awayî elman keti bûn devê avtenga Çeneqelê, heçko tirk di Mermerê de girtî ma bûn. Lê tirko digot hetanî ko pê li erdê min nekin ez nakevim şerî.

Di meha Nîsanê de şer li Efrîqê jî germ bû. Wer dixuye ko elmanan ji ker ve esker anî bûn Trablisxerbê û karê xwe kiri bûn. Ji nişkekê ve dirêjî Bingaziyê kirin û di nav çend rojan de gihaştine tixûbên Misrê. Bi rê ve herçî keleh û bajar hebûn ji Tobriqê pê ve, tev de ketin destên elman û talyanan.

Di vê qada şer de eskerê ingilîzan hindik bûn. Ji ber ko ingilîzan piştî ko di Bingaziyê de zora talyanan biri bûn û ew ajoti bûn ber bi Trablisxerbê mixdarek esker ji vê qadê hilanîn û anî bûn Hebeşistanê; û birek esker jî rêkiri bûn Yewnanistanê.

Ingilîzan jî li Hebeşistanê şerê talyanan kirin û ew yekcar şkênandin.

Li meha Nîsanê di warê siyasetê de bûyereke girane çêbû. Ûris û Japon li hev hatin. Li 14ê Nîsanê li Moskoyê di navbera Ûris û Japonan de lihevhatinek hatiye imza kirin. Li gora wê lihevhatinê, heke yek ji van her du dewletan, yanî ji ûris an japon, bi dewleteke din re kete şer, dewleta din di wî şerî de wê bêterf bimîne.

* * *

Li meha Nîsanê li Iraqê hikûmet hati bû guhartin. Reşîd Alî Begê Kêlanî hikûmet xisti bû destê xwe. Wesiyê textê Iraqê Mîr Evdilîlah revî bû Felestînê. Gelşek keti bû navbera ingilîz û iraqiyan. Ji ber ko ingilîz esker anî bûn Besrê. Li dawiyê ingilîz û iraqiyan li hev xist û iraqiyan dest danîn hin balafirgehên ingilîzî. Şer dirêj bû. Elmanan jî bi hin balafiran arîkariya iraqiyan kir. Lê ingilîzan ji Hindistanê eskirine nû û çekine giran anîn û bi êrîşekê zora iraqiyan birin; ketin Bexdayê û bajarên Iraqê ên din. Reşîd Alî beg digel hevalên xwe çû Ecemistanê; Mîr Evdilîlah û peyayên wî vegeriyan Iraqê. Ev şer jî bi vî awayî qediya û ingilîzan welatê Iraqê ji eskeran tejî kir.

Di warê siyasetê de tevgirêdana elman û frensizan diket ber çavan. Frensizan nîzingî li elmanan dikir. Emîral Darlan çû Elmanyayê û bi darî Hîtler ket û wer dixuye ko elman û frensiz li ser hin tiştan li hev hatin. Ev lihevhatin ingilîz û emêrikaniyan dixeyidand; û ev her du dewlet li Frensê radibûn. Ingilîzan bêbextî bi aliyê Frensê ve dida. Xulase navbera van her du hevalbedên kevin roj bi roj vedibû. Wer xuya dikir ko dilê ingilîzan heye ko frensizan biêşîne.

Li meha gulanê şer nemaze di behir û di hewan de çêbû; hêj rastir di ezmanan re daket bejê.

Piştî şikestina Yewnanistanê qral digel hikûmeta xwe li girava Giritê qerar girti bû. Ji ber ko Girit ji beja Yewnanistanê dûr e; û derbasbûna behirê ji elmanan re zehmet e. Hin eskerê ingilîz jî derbasî Giritê bû bûn û digel yewnanan girav asê dikirin.

Li 20ê Gulanê, elmanan bi balafiran dirêjî Giravê kir; û herçî balafirgeh û aşêgeh in dane ber bombaan. Ingilîzan digel yewnanan bera elmanan dida. Stola ingilîzan ya behira spî di dora giravê de digeriya û bera balafiran didan.

Digel vê hindê, elmanan di nav sê rojan de bi sîwanan qederê deh hezar esker daxistin erdê Giritê û di hin cihên giravê de asê bûn. Şerekî no di navhera elman û ingilîzan de çêbû. Piştî ko lingê elmanan di Giritê de erd girt talyanan jî hin esker anîn giravê; û şer dwanzdeh rojan dom kir, û elmanan Girît vegirt.

Di meha Gulanê de li Etlantîkê jî şerekî mezin çêbû. Beriya niho şerê Etlantîkê; şerê noqaran bû. Noqarên elmanî direjî vaporên ingilîzî yên ko çek û zad tînin, dikirin.

Li 20ê Gulanê di Etlantîkê de hin cenkeştiyên ingilîzî û hinên elmanî rastî hev hatin. Cenkeştiya elmanî Bismarkê bi 35000 tonî cenkeştiya ingilîzî Hût bi 42000 tonî bin av kir. Lê ingilîzan dan pey Bismarkê û piştî sê rojan Bismark xeriqandin û heyfa Hûta xwe hilanîn.

Li Efrîqê, di qada Selomê de şer heçko sekinî ye. Lê li Hebeşistanê talyan dişkên û ingilîz didin pey. Wer dixuye ko gelek najo li erdê Hebeşistanê talyanek jî namîne.

* * *

Di vê mehê, yanî di meha Hizêranê de şer ket welatê Sûriyê jî. Herwekî me goti bû ji ber ko hikûmeta Merêşal nîzingî li elmanan dikir Ingiltere jê ne razî bû. Birekî frensizan jî digel ingilîzan bûn. Ji wan re «golist» digotin. Ji ber ko navê mezinê wan general Degol e. Ew bi navê Frensa serbest an aza jî bi nav dibin.

Di babeta şerê Iraqê de me goti bû ko elmanan bi balafiran arîkariya iraqiyan kiri bû. Ew balafir di ser Libnan û Sûriyê re derbas dibûn diçûn û ji bo standina benzînê jî datanîn balafirgehên van welatan. Piştî ko ingilîzan iraqî çêkirin ew balafir dîsan di riya jorîn re vedigeriyan û diçûn wargehên xwe.

Ingilîzan ev tişt ji frensizan re hêncet digirt û gazind ji wan dikir û digot ko hin balafirên elmanî di balafirgehên Libnan û Sûriyê de dimînin. Bi ser ve zêde dikirin û digotin ko elmanan esker derêxistine Lazqiyê. Hikûmeta Merêşal derew bi aliyê van nûçeyan ve dida.

Balafirên ingilîzî li balafirgehên Şam; Heleb û Riyaqê dixistin. Êdî xuya dikir ko ingilîz û frensizên golist wê direjî Sûriyê bikin. Li 5ê Hizêranê general Denz ji Radyowa rohelat ji frensizên Libnan û Sûriyê re nitqek got û ji wan re da zanîn ko heke ingilîzan direjî Sûriyê kir ordiwa rohelat wê dest bibe xwe û bera wan bide.

Li sibeha 8ê Hizêranê bi şefeqê ve ingilîzan û frensizên golist ji aliyê nîvro lêxistin û derbasî axên Libnan û Sûriyê bûn. Şer dest pê kir. Sibetirê dengê topan ji Şamê dihate bibîstin. Lê ingilîzan digot dilê me nîne em li frensizan xin; armanca me derêxistina elmanan ji Sûriyê ye; û teklîfî frensizan dikirin ko bê şer teslîm bibin; û ji lewre hêdî hêdî bi pêş ve diçûn. Lê frensizên hikûmeta Vişiyê ji ya wan ne dikirin. Ji lewre şer dom dike. Li behrê û li hewayê jî li bev dixin. Ingilîzan di bakur re jî ketine erdê Sûriyê û berê xwe dane Tidmir û Dêra-Zorê. Ji milê din hatin pêşiya Bêrûtê jî.

Li 21ê Hizêranê wextê nîvro eskerên ingiliz û frensizên gotîst ketine Şamê û eskerên hikûmeta Vişiyê xwe jê dane paş.

Di warê siyasetê de jî bûyereke girane hate pê. Li 18ê Hizêranê li Enqerê tirk û elmanan tifaqeke nelihevxistinê imza kirin. Herwekî me di jor de goti bû Tirkiye hevalbendê Ingilterê ye; ji lewre dinyayê li vê tifaqê ecêbmayî ma. Lê tirkan da zanîn ko bi vê tifaqê hevalbendiya wan bi ingilîzan re xerab nabe. Dîsan tirkan ji ingilîzan re got ko tucaran nahêlin eskerên biyanî di erdê wan re biborin.

Li 22ê Hizêranê şerekî nû dest pê kir. Şerê ûris û elmanan. Herwekî xwendevanên me dizanin û me jî li jor goti bû Ûris li ingilîzan qulipî bûn û keti bûn tayê elmanan û bi wan re tifaqeke nelihevxistinê jî imza kiri bûn.

Lê Hitler bi hêncela ko Ûris li ser gotina xwe nasekinin guh ne da tifaqa nelihevxistinê û direjî welatê ûrisan kir. Romanyê jî bi elmanan re direjî ûrisan kiriye. Welatê ûrisan welatekî mezin e; xelkê wî zehf in. Bivê nevê di navbera ûris û elmanan de şerekî mezin wê çêbibe; û herçî dijminên Elman in wê bibin hevalên Ûris.

Şam: 23 Hizêran 1941

NÊREVAN

---

## KURD YEK IN

### ŞAGIRDÊN SINIFEKÊ WEK ZAROYÊN MALEKÊ NE

— JI BO PIÇÛKÊN KURDAN —

Dihî, piştî nîvro, gerînendeyê me bi kurikekî piçûk kete sinifa me.

Cilên kurik paqij, rûyê wî esmer û çeleng, porên wî reş bûn. Çavên wî ên kesk diçirisîn û mêraniya Kurdên jorîn li rûyê wî dixistin.

Gerînende, bi mamosteyê me mirza Ferîdûn re bi dengekî nizm axaft; derket û çû.

Kuriki nih hati li me bi tirs dinêrî. Mamoste rabû, bi destê wî girt û gote me: «Zaroyên min! divê hon îro pir kêfxweş bin! Niho ji we re ji kurdên jorîn hevalek tê. Ew li Mûşê hatiye dinê li ciyekî dûr; ji kenarê bakurê Kurdistanê. Qedrê wî bigirin ji ber ko ev kurê ciyekî Kurdistanê ye ko ji milet re mirovên bi nav û deng, xebatkarên baş, û leşkerên hêja bixwedî kirine û îro ji dike. Hejî wî bikin kurên min! Da ko ew xerîbiya xwe neyîne bira xwe. Da bizane ko zarokekî kurd li her dibistana kurd, û li her derê Kurdistanê ji xwe re zû hevalan û bran pêda dike.»

Paşê mamoste li dîwarî, li ser xerîteya Kurdistanê Mûş şanî me kir, rûnişt û bi dengê xwe ê ahengdar banî Gurgînê Reşo kir.

Gurgîn ji ciyê xwe derket, çû li ber mamostê rawesta. Mirza Ferîdûn gotê: «Gurgîn! di sinifa xwe de tu ê pêşîn î; divê tu bi navê sinifê û bi navê piçûkên kurd ên Cezîrê silava xêrhatinê li hevalê xwe ê nih bikî!»

## JÎNA MILET

Şêxê kurdan, ferz e ser we, jiyîna milet, wek
[ selat ;
Şert û bendan bes bikin ; qebqeb nekin
[ wek kewrebat
Şerm e bo we, hon fehê nakin dixwin
[ xeyrên welat
Xwe nekin bo sofiyan her wek'ize, pût û lat
Xwe bikin wek aliyê şêr rab'ne bo milet û dîn

Mîr û begler naketin mêjàn û naçin camiyan.
Herçî şêx hez naketin, mensûr be milet
[ tev melan
Ey gelî kurdan, binêrin mane em wek sêwiyan
Xwe bikin yek, da biçin em, cem Celadet
[ Kamiran ;
Bo bikin çare ji bo vî miletê b'ax û enîn.

Bo Xwedê, hon bibne yek, terk bikne wan
[ bend û şera
Rabne ser xwe da bixwînin sûretê «Alem tera»
Miletê kurd amirê « ma'rûf û nehya minkera »
Ka dema ko ez bibinim vêkevit bo me çira!..
Ta qiyamet, ez bi hesret, dilpijan û dilbirîn...

Ey gelî şêx û egidan, tev li axa û melan ;
Ma Xwedê gotiye milet hon bixwin her wek
[ guran ;
An dibêjî ceng û bendan rast bikin wek
[ dijminan
Yan bi xîbet û nemîmet hon bikin paşgotinan
No, dibêjî bibne wek avaniyek, gêçirmeyîn.

Rabne bo milet û dînê xwe biçûk û hûr û gir,
Hon bi yek bin çêtir e, bo we ji top û balafir
Paleya dijmin nekin, û neb'ne rencber,
[ bibne hur ;
Heye deh milyon nifûsa me kurmanca zêdetir
Qet tunîne kes ko kurdan bikne yek û
[ bicivîn ?!...

M. MASÛMÊ HAMIDÎ

---

Gurgîn zivirî û bi dengê xwe ê ziz gote mûşî: « Tu bi xêr hatî brayê delal ! Xwe bihin fireh bike ! Ev der jî welatê te ye ! Em gî bra û yar in ! » ew himbêz kir û her du binarikên wî maç kirin.

Ji kêfa, me li çepikan xist mamoste ji şa bû, mûşiyê piçûk jî dikenî. Mîrza Ferîdûn ciyek şanî mûşî da û ew rûnand.

Mûşî hîn nih rûniştî bû ko ji her derê sinifê jê re qelem, defter û kaxez hatin. Kurikeki ji Silêmaniyê jê re resmê seraya Silêymaniyê şand; min bala xwe da; ala rengîn di ser re pêl dida û diçirisî.

DERKETÎKÎ DÊRSIMÎ

# JI XORTAN RE

Rudyard Kipling şair û feyleşofê ingilîzî şîret li xortan kiriye û gotiye :

— Te dît ko xelk di dora te de şaş bûn û ji te re dibêjin tu jî şaş î ; guh mede wan..

— Ko xelk ji te kete şikê, tu ji xwe bawer bibe, û guh mede gotina wan.

— Heke dikarî bendewar bibî û ji bendewariyê bêzar nebî ; ko xelkê derew li te kir tu hergav bide ser riya rastiyê.

— Heke xelkê ji te nefret kir tu ji wan mexeyide

— Xeyalan bike lê wan ji xwe re meke xwedî.

— Baş bifikire, lê fikrên xwe ji xwe re meke serêş.

— Serdestî û bindestî, van her du xapinokên ha wek hev bizane û xwe bi wan mede xapandin.

— Heke gotinên te ên rast derew derêxistin û gotin ko tu xelkê dixapînî tu guh me de wan.

— Bi salan ve dixebitî, xwediyê tiştan dibî, pişt re, rojekê wan giş winda dikî û ji nû ve ji bo pêk anîna wan dixebitî.

— Divê bikarî malê xwe giş bi carekê de bavêjî hat-û-batê û bêjî : Min da an min bir. Û ji çûna wî tu keseran nekişînî û bi agireki xurt xwe ji nû ve bidî xebatê.

— Dil û laşê te ji mêj ve westiyane ; lê di giyanê tê de hêj tiştek heye û nav di te dide û dibêje : Xebat, xebat ... û te davêje xebatê, dest bibe xwe.

— Bi mirovên kêm re te da û stand rûmeta xwe winda meke.

— Ko bi şêx û axan û dewlemendan rabû û rûniştî, bala xwe bide hişê rastiyê ji te nebit.

— Ne ji dijminê xwe, ne jî ji dostê xwe ê delal meêşe.

— Qedirê her mirovî bigire lê behayê wan zêde mehesibîne.

— Ji demên jiyîna xwe deqîqê jî bê kar û havil derbas meke.

— Ko tu ketî ser şêst û pêncan jî xwe bide xebatê wek xorteki bîst û pênc salî.

Heke tu bi şîretên min ên jorîn ve çûyî, hingê dinê û tiştên wê dikevin destên te û tu dibî mirov, kurê min.

NÛREDÎN ÛSIF

## RABÛN Û RÛNIŞTIN

Kurd gelek bi edeb û terbiye ne. Rabûn û Rûniştina wan, dan û standina wan bi rêz û tertîb e. Kurd nazik, giran û bi edeb in. Xwediyê gotina xwe ne; paşgotiniya xelkê na kin; dostê dostê xwe, û dijminê neyarê xwe ne.

Pir na xêvin, gotina xwe bê sebeb dirêj na kin, gava erê dibêjin erê ye û gava no dibêjin no ye. Beriya ko tiştekî bêjin, wî tiştî xweş didin eqlê xwe û êdî ji gotina xwe bi şûn da venagerin; heke wad dan poşman na bin; bi dilxweşî û ciwamêrî wada xwe tînin cih.

Qencî û xirabiya ko ji wan re hate kirin, ji bîr na kin; heke dijminê wan kete bextê wan, di sûcê wî diborin.

Lê ez dibînim, hinên di wan, rêz û rêzikên bav û kalên xwe ji bîr kirine û bi adetên miletên biyanî ên nexweş emel dikin. Ev tiştekî ne çak e, xerab e. Divê mirov dev ji adetên bav û pêşiyên xwe ên qenc bernede.

Tenbî û qeydeyên jêrîn ji bona wan in:

Gava ji keseki tiştekî dixwazin, me bêjin — bide min —, lê bêjin — ji kerema xwe bide min.

Ko ji we re tiştek hate dan - spas - bêjin û pê dilxweşî û minetdariya xwe bidin zanîn.

Gava kesek ji we tiştekî dixwaze û — kerem ke — dibêje, lê vegerînin û bêjin — di nav keremê de bimînî.

Heke kesekî banî we kir; lebê an fermû, an ez xulam, ez benî, ez gorî, ez qurban bibêjin. Kurd hemî wisa dibêjin.

Ko keseki ji we tiştek pirsî - erê - an -no-, yan dizanim an nizanim bêjin; hi, ha me bêjin û serê xwe mehejinin, ev kêmasiyek e.

Gava hon tiştekî vedixwin, bi edeb û isûl vexwin; hêdî, hêdî û bêdeng bikişînin; yên dora xwe aciz me kin.

Wadê hon li ser xwarinê ne û parî di devê we de ye. milçe milç û çelq û çelq me kin. Heke hon di civatekê de, di nav xelkê de rûniştî ne, bi qirpe qirpa qirika xwe kari bin, hevalê dora xwe aciz me kin, nemaze ev tiştekî pir eyb e; kêmaniyeke mezin e.

Pêşbirî li jin û zarokan me kin; rê li wan me birin.

Wadê hon daxêvin, dengê xwe bilind me kin û heke mirovek dipeyive, gotina wî me birin û beriya ko ew gotina xwe biqedine, dest bi axaftinê me kin. Her rastiyê bibêjin; derewker rûreş in.

Dest û tiliyên xwe me kin dev û difn û guhê xwe û wan pê paqij me kin.

Wadê hon dikuxin an dibihnijin, destê xwe û hêj çêtir destmala xwe bidin ber devê xwe.

Li erdê tif me kin. Goşt û xwarina ber diranan tû me kin erdê. Ariya cigara wxe, di nav civatê de, me weşînin erdê.

Li zaroa me din, wan pir me êşînin; wan tirsiyandî û çavşkênandî me kin, ew pê derewîn dibin.

Çiqas ji bixeyidîn dijûna me kin; xeberên xerab me bêjin.

Bê sebeb sond me xwin; bê işekî giran xelkê me din ber sonda.

Di nav axaftinê de, bi serê bav û pêşiyê xwe sond me xwin û bi serê bav û kalê xelkê û gora wan ji sond me xwin; ev tiştekî zehf kirêt e.

Gava ko hon tên malekê û banî we dikin ser xwarinê, bi derew me bêjin em têr in; û werin ser sifrê.

Wadê ji we tiştek tê pirşîn; xweş bala xwe bidin heta ko hon bikarin cihabê lê vegerînin.

Gava kesek ji we re tiştekî dibêje an qise dike, bi lez û bez me bêjin ez dizanim; guhê xwe bidin ser galgala wî; bi bala fireh mirov hêj çêtir dielime.

Ern û bihintengî tiştine neqenc in; nemaze li ber mirovên qels û belengaz û jin û zaroa; dilşikestina wan kêmasiyek e.

Çavsoriya xwe li xurtan bikin, li yên di ser xwe re bikin; ne li yên di bin xwe re, ne li yên kêmî xwe.

Dr. KAMIRAN ALÎ BEDIR-XAN

---

## FERHENGOK

DÛPAŞ (n) — Birê bêjeyê ê guhêrbar. Di bêjeya « ketin » de du bir hene « ket » û « in » « ket » rayek û « in » dûpaş e; û ev dikeve şikiline din û diguhêre: Ez ket - im, tu ket - î, ew ket - in [Terminaison].

FOLKLOR (m) — Ev bêje di eslê xwe de, ingilizî ye. Lê îro ketiye hemî zmanên dinyayê. Ji lewre me jî ew xistiye zmanê xwe. Ji xwe kurdên Qefqasê beriya me ev bêje xistine zmanê me û kitêbek bi navê « Folklora Kurdmancî » belav kirine. Folklor tevayiya adet, çîrok û stranên mileteki ye. Ew adet, çîrok û stranên ko ji nav xelkê bi der ketine û di dora nifşan de bi ser ve ketine û gihaştine nifşên nû. Ji xwe bêjeya folklorê bêjeke bihevketî ye û bi mana zanîn an zanistiya xelkê ye. [Folklore]

GUHÊRBAR — Tiştê ko di hal û şikilekî de namîne, diguhêre û dikare biguhêre. Ev bêje guhêbar e. Yanî şikilê wî diguhêre û di balekî de namîne. Herwekî bêjeya « bajar ». Ez ji bajêr têm. Tu vî bajarî dibînî. Ez van bajaran dibînim. [Variable]

Rayek (n) — Birê bêjeyê ê neguhêrbar. Di bêjeya « ketin » de « ket » rayek e û tucaran naguhêre. Ez ket - im, ew dê bi - ket - a, ez ket -i- biwam. ew ket-i bû. [Radicale]

FERHENGVAN

# BINGEHÊN GRAMÊRA KURDMANCÎ

BI NAVÊ YEZDANÊ PAK Ê DILOVAN Û MIHIRVAN

— 4 —

35 — Hevenav û serenav. Navdêr di nav xwe de û di bingehî de bi du biran leva dibin: hevenav û serenav.

36 — Hevenav. Hevenav ji wê navdêrê re dibêjin ko ji yekî bêtir kes, heywan an tiştan dinimîne û wan bi hev re bi nav dike. Herwekî rêwî, hesp, çiya. Bêdiro, gava em rêwı dibêjin; ev bêje navê her mirovî ye ko bi rê ve diçe. Bêjeya hesp jî welê ye; pê herçî heywanên wî cisnî hene têne seb kirin. Bi bêjeya çiya herçî bilindcihên dinyayê hene ko ne gir, ne mitik in û ji wan bilintir in têne bîrê. Ev in çend hevenav: « Şagirt, xani, evor, mase, can, bînahî, derzî, kerî, pez, kevir, dar, qencî, xelk, zîwan, keskesor, navro, girav, şeh »

37 — Serenav. Serenav ew navdêr e ko bi tenê keseki, heywanekî an tiştekî dinimîne û xweserî wî kesî, wî tiştî an wî heywanî ye. Herwekî: Sado, Bêlan, Herekol. Ev navdêrên ha yeko yeko xweserî miroveki, seyekî û çiyakî ne. Ev in çend serenav: « Hevind, Sîpan, Xabûr, Hindistan, Hezro, Kerevon, Zin, Dêrgul, Kurdistan, Agirî, Cemşîd, Ferezende ».

## GUHÊRBARIYA NAVDÊRAN

38 — Navdêrên zmanê kurdmancî ji du awirên têvel ve guhêrbar in: zayend û mêjer. Ev guhêrbariya navdêran bi tewangê têtê pê. Bi gelemperî dûpaşê navdêran li gora zayend û mêjerê wan diguhêrin. Carina jî ev guhêrbarî bi guhêrina tîpeke rayekî tête pê.

39 — Zayend. Di zmanê kurdmancî de du zayend hene: mê û nêr.

40 — Zayendê nêr. Navên mirov, heywanên nêr û navên tiştine nerîhber yên ko kurdmancan ew nêr hesibandine, tev de ji zayendê nêr in. Wek: « Cemşîd, mêş, nêrî, ga, xanî, gir, Ferat, can, beran, Xurşîd, derî, êzing, hiş, çem, kevir, law, dirhav ».

41 — Zayendê mê. Navên jin, heywanên mê û navên tiştine nerîhber yên ko kurdmancan ew mê hesibandine, tev de ji zayendê mê ne. Mîna: « Sînemxan, jin, meh, dar, çêlek, mehîn, tifing, hizin, bîr, gol, pehnav, Herekol, Hezarom, co, enî, top, ejnû, Kurdistan ».

42 Navên heyberên rîhber. Di heyberên rihber de, carina mê û nêrê wê heyberê bi bêjeyine cihê û biserxwe têne nîşan kirin. Herwekî di bêjeyên jêrîn de:

| | |
|---|---|
| Bra | Xweh |
| Pismam | Dotmam |
| Bûra | Diş |
| Kur | Keç |
| Brazî | Brazê |
| Hesp | Mehîn |
| Yekane | Mehû |
| Beran | Mih |
| Nêrî | Bizin |
| Dik | Mirîşk |

Lê gava ew heyber bi awayê jorîn, bi bêjeyine biserxwe û cihê ne binavkirî ne, hingê bêjeyên « mê » û « nêr » bi ser wan ve datînin û bi vî awayî zayendê wan, yanî mê û nêrên wan didin zanîn. Di vî şikilî de veqetandekek dikeve navbera bêjeya rayî û bêjeyên « mê » û nêr. Veqetandek bi xwe jî zayendê wan şanî dide. Wekî niho:

| | |
|---|---|
| kewê nêr | kewa mê |
| kerê nêr | kera mê |
| pisingê nêr | pisinga mê |
| sîxurê nêr | sîxura mê |
| hirçê nêr | hirça mê |
| gurê nêr | gura mê |
| fîlê nêr | fîla mê |
| kevroşkê nêr | kevroşka mê |

43 — Qeyda jorîn, qeyda gelemper e. Yanî mê û nêrê heyberên rihber, nemaze heywanan, bi gelemperî bi vî awayî têne nîşan kirin. Lê kêm caran û ji vê qeydê der, bêjeyên « mê, nêr, dêl, mak, mang » dikevin pêşiya bêjeya rayî û bêî tu tiştî bi wan ve dibin; bêjeke nû û bihevketî ditinin pê. Hingê ew bêje bi hev ve têne nivisandin. Herwekî: « nêreker, maker, mêkew, dêlegur, mange »

Şanek — Zayendê heywanekî, carina, bi veqetandek û tewangê jî têie nîşan kirin. Gava em dibêjin: « hespa min bîne » an « kera min bîne » xuyaye ko em qala mehîn û makerê dikin. Dîsan gava em dibêjin: « ez li hespê siwar bûm » an « ez li kerê siwar bûm » gelek kifş e ko heywanê ko em lê siwar bûne « mehîn » an « maker» e û ne « hespê nêr » û « kerê nêr » e.

(dûmahîk heye) C. A. BEDIR-XAN

# Kitêbxana Hawarê

Hejmar:

1 — Rêzana Elfabiya Kurdî C. A. Bedir-Xan.
2 — Rupelnine Elfabê C. A. Bedir-Xan.
3 — Dilê Kurên Min Dr. K. A. Bedir-Xan.
4 — Bîyişa Pêxember. Bi Kurdiya dumilî, bi dîbaca C. A. Bedir-Xan
5 — Nivêjên Êzediyan bi dibaca C. A. Bedir-Xan
6 — Mektûb ji Mistefa Kemal paşê re C. A. Bedir-Xan
7 — Mesela Kurdistanê Bazîl Nîkîtîn.
8 — Ji mesela Kurdistanê C. A. Bedir-Xan
9 — Elfabeya Kurdî Dr. K. A. Bedir-Xan
10— Xwendina Kurdî Dr. K. A. Bedir-Xan
11— Elfabeya min Dr. K. A. Bedir-Xan
12— Dersên Şerîetê Dr. K. A. Bedir-Xan
13— Çarînên Xeyam Dr. K. A. Bedir-Xan
14— Proverbes Kurdes. Medhelokên Kurdî. Lucy Paule Margueritte û Emîr. K. A. Bedir-Xan Paris - 1937
15— Le roi du Kurdistan. Qralê Kurdistanê. Emir K. A. Bedir-Xan û Adolphe de Falgerolle. Paris - 1937
16— Der Adler von Kurdistan. Eyloyê Kurdistanê. Prinz K. A Bedir-Xan û Herbert Örtel Berlîn - 1937
17— Der Schnee Des Lichtes. Berfa Ronabiyê. Şibrên Kurdî Prinz. K. A. Bedir-Xan û Dr. Curt Wunderlich Berlîn - 1937

# Kiryariya Hawarê

| | | | |
|---|---|---|---|
| Salî | 500 | Qirûşên | Sûrî |
| Şeşmehî | 300 | Qirûşên | Sûrî |
| Sêmehî | 200 | Qirûşên | Sûrî |

Xwedî û gerînendeyê berpirsiyar: Mîr Celadet Alî Bedir-Xan. Şam—Sûriye
Directeur Propriétaire: Emir Djéladet Aali Bedir-Khan. Damas—Syrie

SAL 9
HEJMAR 31
ÎN
1 TEBAX 1941

ANNEE 9
NUMERO 31
VENDREDI
1 AOUT 1941

# HAWAR

## KOVARA KURDÎ ✶ REVUE KURDE

### TÊXISTIYÊN VÊ HEJMARÊ



### BIRÊ FRENSIZÎ



ŞAM—1941
ÇAPXANA SEBATÊ

SAL 9
HEJMAR 31
ÎN
1 TEBAX 1941

# HAWAR

ANNEE 9
NUMERO 31
VENDREDI
1 AOUT 1941

KOVARA KURDÎ ✶ REVUE KURDE

## TEFSÎRA QURANÊ

114 - Ji mirovê ko di mizgeftên Xwedê de dibe mania anîna navê Xuda û avahiyên Xwedê hildiweşîne, ma jê zalimtir kî heye? Gava ew zalim dixwazin bikevin mizgeftan, bê lerz û tirs, ni karin derbasî hundirê mala Xuda bibin. Ji wan re di dinyayê de rûreşî û perîşanî û di axiretê de ezabekî mezin heye.

115 - Xuda xudanê rojhelat û rojava ye. Hon berê xwe ber bi kû ve bidin jî, rûyê Xwedê li we ye. Qencî û piyariya Xwedê mezin e; û ew mirazê dilrastan dizane.

116 - Cuhî, file û dîn-nezana got: Xwedê yek ji xwe re kiriye law.... Gotina wan nagihe bilindiya Xwedê. No ... ya rast ew e ko heçî di erd û ezmanan de ne, evdên Xuda ne û guhdariya emrên wî dikin.

117 - Xuda xaliqê erd û ezmanan e. Gava xwedê bi çêbûna tiştekî dil dike, jê re dibêje: Bibe û ew çêdibe.

118 - Nezanan digot: Ma çi dibû, heke Xuda bi me re biaxafta û ji te delîlek ji me re bidaya. Pêşiyên wan jî wisa digot; heye ko her du jî weke hev in. Me ayetên xwe pêş mirovên bawermend kirine.

119 - Peyxemberê min .... Me tu, bi dîn û Quranê rêkiriye heta ko tu ji mirovên bawermend re mizgîniya xweşiyê bidî û ên mayîn bi ezabî bitirsînî. Ji te halê dojehketiyan naye pirs kirin, halê mirovên ko li ser riya xwe a xwar pê didin erdê.

120 - Pêxemberê min .... Heta ko tu ji Cuhî û Fileyan nebî, ew ji te dilxweş nabin. Bêje wan: Riya rastiyê ya Quranê û misilmaniyê ye û jê pê ve tu rê nîne. Piştî dahatina Quranê û hikmên di wê, heke te li gora gotina wan bikira, tu êdî ji destê ezabî xelas ne dibûyî û tu kesî ne dikarî bû te jê bifilitîne.

121 - Yên ko... Kitêba ko me daye wan rast dixwînin, guhdariya hikmên wê dikin û emrên di wê bi cih tînin ew pê bawer bûne.

Lê yên ko hikmên kitêbê inkar dikin an diguhêrin ew dibin kafir û ew dikevin xisarê.

122 - Gelî lawên Israîl .... Qenciya ko min bi we re kiriye bînin bîra xwe; min kal û kalikên we ji hemî miletan çêtir girti bû.

123 - Ji wê rojê bitirsin ko kes tê de ni kare arikariya kesî bike û dayîna berdîl û mehdera yekî ji yekî re naye qebûl kirin û hon tê da bêarî wê bimînin.

124 - Wê demê bînin bîra xwe ... Xuda bi pêkanîna emrên diyanetê ji Ibrahîm re emir da û ew pê ceriband. Ibrahîm her hikmên Xwedê pêk ve anî. Xuda jê re got: Ezê te bikim rêberê xelkê. Ibrahîm got: Lê çêliyê min? Xwedê lê vegerand û got: Ez bextê xwe na dim zaliman.

125 - Dîsa bînin bîra xwe ... Me Kabe dergeh û cihê civandina xelkê û ewlegehê wan kir. Meqamê Ibrahîmî jî, ji xwe re bikin nimêjgeh. Me emrê xwe da Ibrahîm û Ismaîl heta ko ew hundirê mala Xwedê her paqij bikin ji bona tewafker û rûxistiyên di wê û ji bo bawermendên ko tê de xwe ji Xudayê xwe re ditewinin û lê secde dibin.

126 - Dîsa bînin bîra xwe... Ibrahîm got: Xudanê min vî bajarê ko min ava kiriye ji xelkê wî re bike ciheki ewle û ji xelkên di wî heçî ko baweriya xwe bi Xuda û roja piştdawiyê anîne, ji hatinên vî bajarî qwil bide. Xuda gote wî: Ji wan pê ve ezê ji kafiran re jî tişteki kêm bidim, lê pişt re, di roja piştdawiyê de, ezê wan bêxim ezabê agirî, ev çûyina wan ber bi agirî ve, çi çûyîneke giran e.

127 - Bînin bîra xwe... Gava Ibrahîm û Ismaîl himê Kabê danîn, gotin: Xudayê me.. Ji kerema xwe, ji me vê avahiyê ji xwe re qebûl bike, ji ber ko tu diayên me dibihîsî û daxwazên me dizanî.

128- Ibrahîm û Ismaîl gotin: Xudayê me, ji kerema xwe, me ji xwe re bike misilman û ji imetên me jî bike mileteki misilman û emrên xwe li ser ibadetê ji me re bide zanîn, em jî ji gunehên xwe tobe dikin û dikevin bextê te. Tu toban didî û toban qebûl dikî, tu mezin û piyar î.

129 - Xudayê min... Ji kerema xwe, ji çêliyê min ê bawermend pêxembereki bibijêre û ji wan re bişîne heta ko ew kitêb û ayetên te, ji wan re bide zanîn û wan ji gunehan paqij bike. Ê delal û zana, ê mezin û piyar tu î.

130 - Ji nefs - sefîhan pê ve, tu kes xwe ji milet û dînê Ibrahîm nade paş; me di dinyayê de Ibrahîm kiriye rêberê riya rastiyê, ew di axiretê de jî, ji birê qencîkeran e.

131 - Gava Xudanê wî jê re got: De nefsa xwe teslîmî min bike û bibe misilman: wî got: Min nefsa xwe teslîmî Mîrê Mîrazan û Xudayê erd û ezmanan kiriye.

132 - Ibrahîm ji kurên xwe re wesiyet kir û Yaqûb jî ji lawên di xwe re got: Xuda ji we re, weke dînê rastîr, dînê misilmaniyê bijart û da, berê mirina xwe divê hon baweriya xwe bi qencî û mezinahiya wî bînin.

133- Gava mirina Yaqûb nîzik bû ma hon li nik wî bûn? Yaqûb gazî Kurên xwe kir û ji wan re got: piştî mirina min honê perestişî çi bikin? Wan got: Emê perestişê Xudayê te û kal û kalikên te Ibrahîm, Ismaîl û Isheq bikin, ew Xudayê ko yek e, bê hevber û hempa ye; em bi wî re dilpak in û em xwe davêjin bextê wî.

134 - Ibrahîm û Yaqûb û çêliyên dî wan derbas bûn çûn, ew ji emelên xwe û hon jî ji emelên xwe berpirsiyar in; pirsa emelên di wan ji we naye xwestin.

135 - Cuhiyan ji Misilmanan re got: Bibin cuhî; Fileha jî wisa got. Tu ji wan re bêje: Em ji her diwan jî nabin, em didin ser riya Ibrahîm a rast, Ibrahîm tucaran ji mişrikan ne bû.

136 - Gelî bawermendino.. bêjin: Me baweriya xwe bi Xwedê û bi Qurana ko ji me re dahat û bi kitêbên ko ji Ibrahîm, Ismaîl, Isheq, Yaqûb û ji êlên di wan re nazil bûn û bi Tewrat û Incîla ko ji Mûsa û Îsa re û bi kitêbên ko ji hemî pêxemberên Xwedê re dahatine anîne û em tu ferqê na xine nav bera wan. Em rastdil in û em ketine bextê Xwedê û nefsa xwe spartine wî.

137 - Heke Cuhî û Filan mina we baweriya xwe anîn; bi kerema Xwedê ew jî dikevin ser riya rastiyê. Lêbelê, heke wan serhişkî kir û xwe ji baweriyê bi şûnda dan êdî aşikar dibe ko ew na din pey rastiyê. Pêxemberê min! Xirabiya wan na gihe te, dev ji wan berde, Xwedê besî wan e, ji heqê wan dertê. Xuda dibihîse û dizane.

138 - Gelî bawermendino... Bibêjin ... Em tabiên dînê Xuda ne, ma ji dînê wî çêtir çi heye? Em peresteşkarê Mîrê Mirazan e.

139 - Pêxemberê min ... ji wan re bêje: Ma hon di heqê Xwedê de berberiya me dikin? Ew Xudanê me û we ye. Em ji emelên xwe, hon jî ji yên xwe berpirsiyar dibin. Em bi dilpakî peresteşkar û secdekarê wî ne.

---

Nîşanek - Di destpêka ayeta notî de xeleketçêbûye; li şûna "ewan ji dexsa xwe", "ew ji dexsa xwe" hate çap kirin. Dr. K. B.

. Ji bona Tefsîra Qnranê k. k. û li hejmarên 27, 28, 29 û 30 fedkirin.

# HEDÎSÊN

## CENABÊ PÊXEMBER

### REHMET Û SILAVA XWEDÊ LÊ BE .

216 - Misilmanê ko têkill xelkê dibe û derdê wan dikişine ji yê ko rûyê xwe ji wan diguhêrine û li ber derdê wan na keve çêtir e .

217 - Ji Xwedê bitirsin û xwarin û vexwarina heywanên xwe bidin wan , wan paqij bikin , bê sebeb wan me westînin û me êşînin; ta ko bikêri xebat, siwar bûn û şerjêkirinê bên.

218 - Ji Xwedê bitirsin û di heqê zaroyên xwe de qenc û adil bin .

219 - Bi qençiyekê , bi dana nîv xurmeyekê jî be, xwe ji agirê dojehê biparêzin , sedeqe mirovan ji agirê dojehê diparêze .

220 - Kafir jî be , ji nifirên bêsûcan bitirsin, di nav beyna wan û Xwedê de tu perde nîne.

221 - Ji eqilmendiya bawermendên pak bitirsin , di çavê bawermendan de roniya Xwedê heye .

222 - Xwedê di roja qiyametê de li du texlît mirovan na neyire , yên ko qedrê mirovên di xwe ni zanin û li wan na gerin ; li gora bayê serê xwe dimeşin û ji yên ko ciranên xwe aciz dikin, qenciya wan vedişêrin û xirabî û kêmasiyên wan rê xelkê didin .

223 - Dido ji yekê , sisê ji didowan û çar ji siseyan çêtir in , ji civan , yekbûnî û yekitiya xelkê hez bikin , Xwedê xelkê di dora yekitiya xwe de dicivîne .

224 - Ji heft tiştên neqenc ko xelk pê diçin helakê xwe biparêzin : Ji mişrikiyê , ji sibirbaziyê , ji kuştina xelkê bê rê , ji xwarina malê sêwiyan û faizê, di şer û qewimandinê de ji bazdanê , û ji kêm kirina qedrê jinên xwedî namûs û ji paşgotiniya wan .

225 - Dest ji zinaya ko Xwedê heram kiriye bikişînin , heke we ew kir emelê xwe ji xelkê veşêrin û tobê bikin , heke hon mikur hatin honê bêne recimandin .

226 - Ji dinya we sê tişt bi min xweş in : pirek, bîhna xweş û mirovên nimêjker.

227 - Xwedê hindik jî be ji wê xebatê hez dike ko roj pê de tête çêkirin.

228 - Xwedê berî her tişti ji cihanîna ferzên diyanetê û di pişt re ji wê kari hez dike ko mirov pê dilê xelkê şa dike.

229 - Ko hon hatine vexwendin herin, diyariya xelkê lê vemegerînin û li xelkê me din

230 - Heke heq û rast bû ko hon li mirovekî hidin li rûyê wî me xin.

231 - Ji xelkê ne şeba menfeeta xwe lê ji bo Xwedê an ji bona tiştekî heq û rast hez bikin an bixeyidin.

232 - Gotina min a spehîtir gotina min a rastir e.

233 - Sifra spehîtir li cem xwedê ew e ko xwarinxwerên wê pir in.

234 - Tiştê ko ji nefsa xwe re dixwazî ji xelkê re jî bixwaze û tiştê ko ji bo nefsa xwe na xwazi ji bona xelkê jî me xwaze.

235 - Hevaltiya xwe de bi tevdîr be; heye ko rejekê dostê te dibe dijminê te, dijminahiya xwe de nerm be; heye ko rojekê dijminê te dibe dostê te.

236 - Li rûyê mirovên ko pesnê we didin axê birejînin.

237 - Tiştê ko pesinker dixwazin bavêjin devê wan .

238 - Cilên pak û spehî li xwe bikin, li heywanên spehî siwar bibin ta ko çavê xelkê pê şa bibe.

239 - Hêj miletê min ji çar adetên dema nezaniyê ne geriyaye; bi navê bav û kalê xwe pesnê xwe didin û mirovê ko ne ji malbatekê mezin in, kêmî xwe dibînin û qedrê wan na girin , li stêra dînêrin û dildikin pê dema daketina baranê bizanin, gava li pê darbesta miriya diçin girî û şîn dikin. Divê ew dev ji wan tişta berdin.

240 - Ko sê mirov tevî hev rûniştine ji wan her siyan dido divê bi dizî ne peyivin û hevalê xwe pê aciz ne kin.

241 - Gava hon ji xew radibin sê caran destê xwe bişon û di pişt re dest bavêjin tişta; hon ni zanin di xew de destê xwe li kû datînin û ji kû hiltînin.

242 - Qedrê bavê xwe bigirin an ne Xwedê ronahiya siûd û xweşiya we ditemirîne.

243 - Hakim bi standina mal û peran zalim û qazî bi xwarina bertîla kafir dibe.

244 - Sê tişt dikarin miletê min bibine helakê: zikmezinî, xewa pir û betalî.

245 - Gava hon tiştkî dikin bi pakdiliyê bikin an ne Xwedê pê qail na be.

246 - Heke tu dewlemend î Xwedê dixwaze ko tu dewlemendiya xwe bi rêz û tertîb şanî xelkê bidî û pê arîkaiya wan bikî Xwedê ji mirovên ko dewlemend in; lê malê xwe ji xelkê vedişêrin hez na ke.

247 - Xwedê ji mirovên gazinker bez na ke. Mirovê ko xwe avêtiye bextê te me kuje.

248 Heke hon qenciyekê bixwazin ji mirovên rûspehî bixwazin.

## MIRINA GURÎ

### Adaptation de « La mort du loup » d'Alfred de Vigny

JI GIYANÊ BRAYÊ MIN
Ê REHMETÎ SEFDER RA

Sefdo, lawecan! Di sala hezar û neh sed û bîst û didowan de em hati bûn Mûnixê. Ez û kekê te kamiran. Em şikiya bûn. Zora me çû bû. Felekê poşîke reş kêşa bû ser qedera Kurdistanê. Êdî di warê siyasetê de tu hêvî ne ma bû. Me tev de digot : Zman, xwevdin û nivîsandina zmanê me; bi tîpên xweser, bi tîpên kurdî. Belav kirina kitêb, kovar û rojnaman. Min ji çiyayên Refanê ji te re elfabeke kurdî anî bû. Tu bînî wê dibûyî. Te digot : « Ez gelek kêfa xwe ji şihreke Elfrêd de Vinyî re ditînim : Mirina Gurî. Rojekê ezê wê wergerînim kurdmanciyê û wê belav bikim ».

Ev deh dwanzdeh sal in, kitêb û kovar bi zmanê kurdî û bi tîpên kurdî têne belav kirin. Lê felekê tu beriya wan belav kirî. Feleka bextreş, mîna Kurdistanê poşîke reş û tarî kişande ser canê te ê lenik û çeleng ji. Bi hêviya ko giyanê te ê pak pê bihese û pê şa bibe, eve min « Mirîna gurî » wergande kurdmanciyê û pêşkeşî giyanê te kir.

Ewir, di ber di ser heyvê re,
Heyva agirgon,
Bi lez ..... derbas dibûn, diçûn;
Qey dû û dûman bûn,
Ji şewatê hildihatin,
Bilind, winda dibûn.

Ji me, heta cihê tavikê miriyan,
Dar û daristan,
Qurmên daran giş;
Dixuyan .....
Wek stûnine reş,
Çira ma heyveron,
Geh geh, dibû geş.

Herçî em nêçîrvan,
Bêdeng, lal û ker,
Me da pexlaxa nerm,
Pûş ê pelaşa, zer,
Me tev dida, seh dikir,
Şafîr, qizbe, devî, şel.

Hêdî hêdî em diçûn;
Me rêl velo dikir,
Em vedihatin erdê û radibûn ser xwe,
Ji nişkekê ve me dît;
Pencine dehbene gir,
Di axê re çûne; li erdê bûne xelek,
Me bibna xwe,
Ji ber xwe çikand û em sekinîn,
Ser ling û nîvekî.

Hevalekî me î pîr,
Şêxê nêçîrvanan,
Şopgerîneki hêja,
Pisporekî rêçan:
Lê vehat, hûr lê mêze kir û got:
Ev, rêçên gur in.
Rêçine nû,
Belê rêç, ew rêç bûn,
Rêçên gurên fêris,
Gurên ko me da bû pey,
Û me dikir
Bi bêbextî .....
Di tariya şevê de ...
Wek dizekine tirsok,
Bi ser wan de bigirin;
Û wan .....
Bidin; ber tifing û xenceran.

Dor bê deng,
Ne pejin, ne teq, ne req,
Tebîet lal û xamûş;
Bi tenê di ezmanan de,
Qulingekî virnî,
Ji refê xwe veqetî;
Xwe dilezand,
Û li refê xwe diqorî,

Rêçnasê me î pîr, veketî bû,
Li rêçan bû bû pebin,
Rêç seh kir û got:
Rêçine teze;
Gur, dêlik û dû cewrik in;
Êdî ....
Tu şik ne ma tê de,
Me xencerên xwe kir kar,
Tifingên xwe dagirt;
Û da rê.

Şax, çiqil .... me ji hev dikir;
Kelem di bin lingên me de, ditewiyan.
Ko hil dibûn; li çîp û hêtên me didan.
Sisê ji hevalên me sekinîn,
Tifingên wan biriqîn.
Min çavên xwe, girt .... vekir;
Hûr, li şafiran mêze kir,
Di nav rejûya reş de,
Du morî diçirişîn,
Û jê wê ve,
Çend xeyalên tenik
Ji bejnan sekinî,
Qey di heyveronê de
Bê hay, feriqet .... direqisîn.

Gur, bavê mal û malbatê,
Xwe da bû pêş,
Di ber devî û dar,
Çav li dora xwe daşt ..., û dît;
Rê lê hati bû girtin,
Dijmin lê bû bû çarnikar.
Dêlika wî,
Hinek jê dûr,
Li ber zarowan şekinî;

Li mêrê xwe dinêrî.
Nêçîrvanê mê î kal,
Nav di seyên me dida û digot:
Ha Şevger ha .... ka Bêlan ka ....
Reşo, tu jî, ji par re .....
Beriya ko se lê bêne wer,
Gur, stoyê seyekî,
Sekî şemboyî,
Kire devê xwe û şidand,
Şidand, şidand, şidand û berneda,
Rexma ko bû,
Ziqziqa xencerên me.
Xencer di rûdiyên wî re diçûn,
Di zikê wî de,
Digihan hev,
Û berikên tifingên me,
Di tihêla wî re tavêtin.
Gur dîsan,
Arçûmekên xwe, şidand, şidand, şidand,
Lê vê carê,
Devê xwe vekir,
Seyê şemboyl,
Ew heywanê fêris,
Beriya gur ....
Ket erdê û mir.
Gur .... li ser totikan rûnştî,
Xwîna xwe alast,
Awirek li me da,
Li jin û zaroyên xwe fedkirî,
Xatir ji wan dixwest.
Û paşê,
Erzîna wî lerizî,
Çavên xwe girt,
Û di xwîna xwe de .... vegevizî.

Min eniya xwe a germ,
Berda ser fola tifingê a sar,
Û ez,
Li vê rastiyê dibûm hişyar:
Heke dêlik hişte ko mêrê wî,
Bi tena xwe, bêkes,
Bê piştmêr, bê heval û hogir,
Bera san û nêçîrvanan bide,
Û di xwîna xwe de vegevize,
Ne ji her ko tirsiya bû,
Û can lê şirîn bû,
Lê diviya bû .... ew,
Biya gurê piştreş, ....
Bimîne ......
Û ji zaroyên xwe re,
Bide zanîn,
Ko li dinyayê
Ji guran gurtir, ji wan birçîtir,
Di qesir û sereyan de rûniştî,
Tevayek heye,
Jê re dibên mirov,
Lê secde dibin,
Çi kedî, çi kovî çi hov. ....

Lê ew .... ew heyîna serfiraz,
Ew bi xwe,
Cenawirekî we ye,
Ne wek cenawirên din,
Ne ji nêz û birçînan,
Lê ji bo kêf û henek,
Dide, her kesî, her tiştî,
Ber mirin û kuştinê.

Herê, diviya bû dêlik,
Bimîne ....
Û ji cewrikên xwe re bibêje,
Mebin nizing, tucaran ....
Avahiyên ko mirov .... tê de.

Ez, şermendeyî heyîna xwe, min digot,
Em mirov, însan,
Digel vî navê bilind,
Çiqas nizim û xwar in,
Bi tenê hon, heywanên fêriş,
Hon in ko dizanin,
Ji vê jiyîna derewîn,
Bê deng, lal û ker,
Bê ax, zar û nalîn,
Xwe bidin paş, jê veqetin,
Terka wê û her tiştên wê bidin.

C. A. BEDIR - XAN

Şairê « Mirina Gurî » Elfrêd de Vinyî edîbekî xudan şûr û qelem bû. Bavê wî zabit bû; ewî jî da bû ser şopa bavê xwe û bû bû zabit. Lê ji ber ko firsenda şer bi dest ne diket; Vinyî piştî ko bû kepîtên ji ordîwê derket û xwe yekcar da edebiyatê.

Vinyî di sala 1797 an de di bajarê Loşê de, ji diya xwe bûye. Hêj di ciwaniya swe de ketî bû civata Vîkor Hûgo, Şarl Nodyê û edîbên din ên mezin wê heyamê. Ji wê heyamê re di edebiyata frensizî de romantîsm dibêjin.

Vinyî xwe ji aleyîşan digirt; xwe gelek têkilî xelkê ne dikir. Hin eserên Vinyî di pey mirina wî re hatine belav kirin. Esera wî « Dafnê » bi tenê di sala 1913 an da ketiye çapê.

Vinyî di sala 1863 an de ji seretanê emrê Xweda kir û qedirê wî piştî mirina wî çêtir bate girtin. Mina medhelokê gotiye: gurî dimirin, porsor dibin.

## DÎK Û ROVÎ

Dîkek hebû qiros û xişt,
Rabû li ser dîwêr venişt.
Rovîkî jîr dîk dît li wir
Hat cem, silav jê ra dikir
Gotê: nînin mizgeft û dêr
Fermû were dane li jêr;
Îro nimêj min ne kir hêj
Bo min bibî tu pêşnimêj.
Fêla rovî dîk bîr dibir,
Zanî ko ew dê wî bigir.
Gotê: nimêj hîn ne bûye,
Bi ser da min destmêj niye
Rovî digot: Ca wer xar,
Pir in li nik min text û dar
Pagekî tu raveke min
Li der mane zarok û jin,
Ava bikin xanîkî çak
Bo te bibin gundîkî pak.
Kês hati bû dîkê qiros,
Rovî êxist feqê bi los.
Gotê: biliv, li pişt dîwêr
Kizîr bîne ez tême jêr.
Rovî berî da cem kizîr:
Lê herde bû tajîkî pîr.
Da xwe bi lez û bez revî
Çû cihekî b'rêl û devî.
Gava ko dîk halê wî dî,
Şa bû dikir qîqxî qîqî ...

OSMAN SEBRÎ

## BEHRAMÊ GOR

Roja bavê Behramê gor canê xwe siparte cebanan û taca kiyanî bi şûn xwe ve hişt; Behram xorteki bengî bû. Tac da serê xwe û li ser textê şahanî bê dilêşî û sergêjî rûnişt. Çiko bav û bapîrên navciwan û cihangîrên bê hemta welatê faris kiri bûn wekî gustîlekê elmas; Behram bi hêsani û bê dijwarî tiliya xwe tê re kişand. Bi navê bav û kalan çend salan bi vî awayî welatê faris xwar. Heman piştî çaxekî hindik berê xwe ji kiyaniya xwe gerand û xiste saz û leyiz û nêçîrê. Behram hevsarê kar da destên mirovên xwînxwar û sitemkar. Ta ji ber derê heywanê padişah dengê belengaz û rebenan û qîrên û hawarên rencber û destgîran digihane gunbeda gerdunê ezmanê bani.

Bi vî awayî û roj bi roj hîmê kiyaniya welatê faris herivtin û maxên wê hilwesiyan. Dijmin û neyaran bêtirs destên xwe dirêj kirin nav welatê faris. Ji vî alî ve Kurdistan û ji wî alî ve Ecemistan li ber lingê neyaran şikestin û gelek ji mirovên xwedî nav û nişan ji ber Behram reviyan û ji welatê faris helistin; xwe dane ber siya kundirê neyaran.

Rojekê Behram digel mopîzan û pehlewanên xwe ji nêçîre dihat. Li bajarekî kavil û wêran rast hatin û dîtin ko li serê dîwarekî du bûm bi dengekî zîz. û bilind dixwînin. Behram xwe ragirt û got: xwezî min zanî biwa ka ev bûm çi dibêjin?

Nageban yekî ji mopîzanên wî rabû ser xwe û got: Ey serbilindê welatê Îran! wey xudanê taca gîran, eger tu ji bendeyê ber derê eyawanê xwe re ferman bikî ezê vê kulê ji dilê te derêxim. Behram zû zû jê re fermana padişahî xwend û vê re destûr da û got, bêje.

Mopîzan got: Bûmê vî alî nêr e; bûma wî alî mê ye. Ê nêr gazî dike a mê û dibêje: were, êvarê nik me razî. Ez û tu emê bikin henek û leqirdiyan; emê li ser gotina xwedê û pêxember herin; dê ji me re zarok çêbibin, em ji bi wan dilxweş bibin û kordûnde nemirin.

A mê: Ez dil dikim, lêbeblê qelenê keçên malbata me giran e; ez bawer nakim ko tu kari bî di bin barê bavê min de rabî.

Ê nêr lê vegerand û got: De bêje qelenê te çi ye?

A mê: qelenê min çel bajarên wêran in; da ko em zivistanê tê de bilûsin û biharan li ser wan bixwînin.

Ê nêr: Serê Behramê gor sax bê; ezê ji niha ta deh mehên din çar sed bajarên wêran bidime bavê te.

Behram ev gotin bihîstin û bê deng û reng kete binê çadira xwe û gazî kire seydayê xwe û jê re got: Ey rêzanê welatê faris vê gotina te agir berda dilê min û cerga min herijand. Belê te birîna min şanî min da. Welê ez nizanim dermanê wê çi ye. Ez dizanim ko ne tu bî kes nikare birîna min derman bike. De rûne û bêje ka em çawan bikin?

Mopîzan rûnişt û got: Ey padişahê welatê faris! te mirovên xwînxwar û sitemkar kirine rêzan û dergevan û rêber û serdar. Wan bi navê te reben û belengaz xudanê nav û nîşan tev dîl û gerdenxwar kirin. Gerek e tu van mirovên bedkar ji dergehê xwe dûr bikî; gencên zêr û zîvin ji wan bistînî û li belengazan belav bikî. Divêt guhê te ji dengê belengazên te re vekirî bê; û çavê te ji wan re belkirî bin; û tu ji wan re dilovan û mihirvan bî.....

Behram ev gotin xistin serê xwe û hey ji nû ve da ser rêça bav û bapîrên xwe û navekî giran û nîsaneke bilind bi şûn xwe ve li cihanê hişt û çû.

## NAVÊN KURDMANCÎ

Kurdmancın hene hêtanî îro jî, navine biyanî, navên Emro û Zeydon, li zaroyên xwe dikin; û gava mirov ji wan dipirse te çire navekî kurdî li keç an kurê xwe ne kir?

Hin dibêjin: maliyan ev nav eciband, ji lewre me navê keça xwe kir « Elya » an navê kurê xwe kir « Xetfan ». Ji wan re tu gotin nîne. Mêrên ko bi maliyên xwe nikarin bivê nevê ewê bi me bikarin!....

Lê hinên din dibêjin: Ma navên kurdmancî hene? Hebin jî em bi wan nizanin. Zûka em li wan vedigerînin û dibêjin: Belê navên kurdmancî hene û ew gelek çeleng û spehî ne. Ji xwe emê hinekê wan ji we re bidin zanîn.

Ji her du tofên jorin pê ve tofeke ecêb û xerîb heye. Xelkê wê tofê kurdine welatparêz û miletperwer in; bi navên kurdmancî dizanin û pend û şîretan li xelkê dikin û dibêjin: Navine kurdî li zaroyên xwe bikin. Lê bi xwe navine biyanî li zaroyên xwe dikin. Do ne pêr Xwedê ji

CEGERXWÎN

xelkê wê tofê yekî re kurek da bû. Me jê pirsî; te çi nav li kurê xwe kir? Camêr hinek sekinî; heçko dida eqilê xwe û di bira xwe de li navê kurê xwe digeriya. Devê xwe bir û anî û paşê bi dengekî nizim mirmirand û got: « Me navê Hesen Besrî lê kiriye; lê di nav xwe de em jê re Gurgîn dibêjin ». Di nav xelkê de ji we jê re Gurgîn bigota ma eybeke mezin bû?.

Herçî peyayên tofa pêşîn, yanî yên ko bi maliyên xwe nikarin; bawer bikin maliyên wan ne kurdmanc in. Êdî dem e ko em kurdmanc jî gub bidin xwîna xwe û xwînên kêm têkilî xwîna xwe a pak nekin.

Min got: « xwîna xwe a pak ». Belê di rohelatê nîzing de û di nav hevnijadên me de tu miletê arî xwîna xwe bi qasî me pak hilnaniye. Ji niho û pê de jî divêt em jî guh bidin xwîna xwe û paqijiya nijadê xwe ji xirabî û kêmasiyê bipapêzin; nemaze ji têkilbûna xwîna miletên nearî.. Ji ber ko herwekî pêşiyên me gotine « xwîn nabe av » û ew rojekê xwe şanî dide; heqê xwe dixwaze û vedigere kaniya xwe. Ma ne heyf e ko mirov rabe şilanê li ser dara gulê biteimîne.

Anîna jinên biyanî ji milê din kurdine nekurdziman ditîne pê. Ji ber ko zaro ne li ber destên bavên xwe lê li ber destên diyên xwe bi xwedî dibin û ji zarê bavên xwe bêtir bi zarê diyên xwe xeber didin. Ev zaro midekî kurdine nekurdziman in; lê piştî nifşekî kurdaniya xwe yekcar winda dikin û dibin ji wî miletê ko bi zmanê wî dipeyivin. Carina jî ew milet dijminê kurd e.

Tebsîra jinan ne bi tenê di zimên de ye. Adet, ziman, rabûn û rûniştin û her texlît aytnên miletan bi destê jinan têne hilanîn. Ji ber ko jin ji mêran bêtir bi boriyê ve girêdayî ne û dan û standina jinan bi biyaniyan re kêm e.

Jin ew peresto ye ko di mala xwe de, zar û zêçên wê lê werhatî, di ber heykela pêşiyan de heyran û heşmetkar rûniştî, lê fedikere; nav di xwe dide û deriyê xwe bi çilmêrekî xurt, li rûyê her tiştê xerib û ne jê digire; û tê de li dijminekî nedibar diqewimine. Ew dijminê nedîbar adet, ziman û aytnên miletên din in. Ew di ber mala wê re digerin; diçin wî serî, tên vî serî, û heke firsend bi dest ket, teqsîr nakin, xwe nadin paş û dikevin ê.

Gava minov li berîvaniyan fedikire isbata gotinên me di wan de dibîne. Herçî mêr di bin egal û keflyên dirêj de winda bûne. Lê herçî jin hetanî îro jî helgihên xwe ên delal ne guhartine û bi kofiyên xwe ên rengereng di beriyên bêdar û belg de wek kulîlkên zozanan ter û taze, serbilind û sereferaz digerin û dixingirin.

Di nav berîvaniyan de dîsan jin in ko navên kurdmancî hilanine. Navên mêrên wan ji hin awartan pê ve tev de navine biyanî ne; navên Emro û Zeydon in.

*
* *

Em îro du lîstan li ser nevên kurdmancî belav dikin. Navên mêran û navên jinan. Bivê nevê her du lîste jî kêm in. Ji ber ko em ji welêt dûr in û di dora me de ew peya nînin ko ji me re navine din bibêjin. Lê me hêvî heye ko bi arîkariya xwendevanên xwe em van lîstan bi ser xin.

## NAVÊN MÊRAN

Ado Agir.
Bado Babîk Balo Baqoq Barano
Baro Bazo Behlo Behrem Behrûz
Belo Bengî Beno Berxo Bexşo
Beybûd Bêco Bêro Biro Bişar
Blêç Boke Bozan Bozo Bûbê Bûbo.
Cangîr Cango Cebo Cemşîd Cano
Cercûr Cimo Cino Ciroro.
Çalo Çarta Çeçan Çeko Çeleng
Çelepo Çelo Çemo Çerto Çeto
Çiro Çûro.
Dara Delo Derbas Dermo Dilawer
Dilo Dimdim Dirbo Dîbo Dogij
Dûwan.
Efo Egît Evdo Emiz Engo Etman
Eto Ewanî Eyas Eylo Eyo.
Felemez Fengenoz Ferhad Ferho
Ferîdûn Ferman Ferzenede Ferzo.
Garis Gefo Gemşo Gerno Gewro
Gênco Gêrto Gêso Gîsko Guhderz
Gurgîn Guro Gurzo.
Henê Hevind Hewran Heyrano Hêman Hirço Hodo Hopo Hovnê Hozo
Hûrik Hûşeng.
Îpal Îskan.
Kakilo Kako, Kamiran, Kekan Kemo
Kendo Kerevon Kero Keser Keyo
Kêfo, Koles Kono Kotos Kundor
Kûço Kûto.

Lendo Lewend Lêzgîn Lêzgo Lolo.
Malo Malor Menteş Mero Meto Mêlo Mistê Misto Mişko Mişo Mûrik.
Nali Nehroz Newzad Niço Nîno Nûto.
Olo Omo Ortas.
Perîşan Perwîz Peşto Peyale Piling Pijon Piran Pîroz Poro Potê Pozo Pûrto Pûşo.
Qajo Qehfûr Qenco Qerno Qoço Qubad Qulo Qulîxan.
Remo Rêso Rindo Rizgo Rîsor.
Sado Segman Serdest Serdil Sertîp Serxan Seydo Sêgul Sênco Siheypûş Siyabend Sîmko Sîno Soro.
Şahîn Şabo Şawês Şermo Şemdîn Şengo Şewêş Şêro Şîbo Şîrîn.
Tacdîn Taco Talo Tazo Temo Têmûr Terho Teto Têlî Têlo Tîro Tolo Toro Tozo.
Ûcê Ûco.
Vêno Vîto.
Welo Wendo.
Xelef Xerzo Xemo Xeneer Xêro Xişman Xorîş Xorto Xurto Xurşîd Xusrew.
Yadîn Yado Yaro Yawer Yekane.

## NAVÊN JINAN

Ano Arê Aşê Avê Axê.
Baran Bazê Benefş Berfê Bersê Besna Beso Beybûn Beyo Bêzar Bêzê Bêzo Bihar Biskê.
Canê Cazê Canzê Cocê.
Çîçek.
Delal Derdê Dilê Dilşa Dirê Dîlber.
Eco Edê Edûl Esmer Etê.
Ferfûr Ferxê Fincê Finco.
Gewrê Gijê Gozê Gulçîn Gulê Gulazer Gulistan Gulîzer Gulnaz Gulperî Gulşa.
Hafo Heftsed Helê Heyveron Hezar
Înê Înikê.
Kejê Keser Kewê Keynê Kilê Kinê Kotê Kulîlk.
Lalîxan Layila Lehle Lêrê.
Mehdiyar Meles Mencê Mencol Menîje Merînas Mestê Meymo Mêrê Mirarî Momê.
Nacîme Nado Narê Narîn Nazê Nazo Nermîn Nesrîn Neslîxan Nêrgiz Nigar.
Otê.
Perîşan Perîzad Perwîn Pîroz Poşî Porgul.
Qerê Qeşem Qumrî.
Rewşen Rewşê Rewşo Rindê Rîhan Rîpê.
Senem Seno Sêrê Sêro Sêvê Sînem Sînemxan Sîsê Sîsin Sonê Sorgul Sosin.
Şayeste Şemê Şengê Şemşûl Şeno Şerbet Şerbo Şêrê Şîrîn Şoxê.
Teyrê Teyro.
Xanê Xano Xatûn Xecê Xeco Xewê Xemlê Xemşê Xehsa Xezal Xizêm Xumal Xumar Xunav.
Zelêx Zerê Zernîşan Zêrê Zêrîn Zîn Zîvik Zîzê.

Di lîsteyên jorîn de hin tişt hene ko mirov divêt li ser wan bisekîne û li wan hûr fedkire:

1 - Navin hene ko li jinan û li mêran bi hev re dikin. Herwekî: « Baran, Boz, Can Keser, Perîşan, Şeng, Şêr, Xem, Şîrîn h. d. [1]»

Heke ev nav li mêran hatine kirin bi tewanga nêr yanî bi « o » yê têne tewandin û gava wan li jinan dikin ew bi tewanga mê yanî bi « ê » yê têne tewandin. Mîna: Şêro Şêrê. Xemo - Xemê. Dilo - Dilê. Perîşano Perîşanê.

2 - Digel vê hindê em di van lîstan de dibînin ko hin navên mêran bi tewanga mê û hin navên jinan bi tewanga nêr hatine tewandin.

Navên mêran: Bûbê, Ĥenê, Potê, Mistê, Hovnê.

Navên jinan: Ano, Beso, Beyo, Bêzo, Eco, Finco, Seno, Ĥafo, Nazo, Xeco, Şeno, Şerbo, Şêro.

Ji milê din navên mêran bin jinan bin carina bi her du tewangan têne tewandin.

| | | | |
|---|---|---|---|
| Ûco | Ûcê | Xecê | Xeco |
| Bûbo | Bûbê | Bêzê | Bêzo |
| Misto | Mistê | Fincê | Finco |
| Besê | Beso | Nazê | Nazo |
| Sêrê | Sêro | Xanê | Xano |

[1] Mîna van her du tîpan heta dawiyê ye. Ji ber kurtiyê holê « h. d. » tête nivîsandin.

## DINYA TARÎ

Heçî rêka diçim pê ve li ser min tarî ye ezman;
Belê binim tirijtavan li nav pêlên evan ewran.
Ji bax û bexçeyên avên dil im hergav birîndar e;
Dipirsim ez hero sed car çira bax im ne hat avdan?
Eve Adar, eve Nîsan; ko roj derket cihan tîsan.
Li ser min tarî ye dîsan, temaşa kin gelî kurdan!...
Ji kurdan pertewek [1] derket hemî dinya pê ronî ba;
Çi kin em her ji vî bextî ko rûreş man wekî sûdan.
Rez û baxên gelek rengîn ji dest me derketin zû da.
Diwxazin dor bikin sênc e, belê çi bikin niye rezvan;
Me nûjen kir kevinbaxek bi mêw û derxik û fêkî;
Hemî vêk re didin fêkî, belê bo wan divêt darvan.

M. EHMED BOTÎ

[1]Mexsed Ehmedê Xanî ye.

Gelek eşkere ye ko ev tişt ji qeyda gelemper der e; û wî tu qeyda xweser nine.

Gelo sebeba wî çiye? Bawer bikin tu sebeba bingehîn jê re nine. Bi tenê ji bo delaliyê an ji bo kêmqedriyê li keçan bi « o » yê û li kuran bi « ê » yê deng dikin. Herwekî li şûna ko « keçê » bibêjin; dibêjin « keço » û ji yekî re ko navê wî « Miştefa » ye li şûna ko bibêjin « Misto » dibêjin « Mistê».

3 - Herwekî me got « ê » û « o » yên ko dikevin paşiya navan tewang in; tewangên bankirinê ne. Ji lewre diviya bû hergav ne bi wan ve bibin; û bi tenê di dema bankirinê de bi wan bikevin. Lê ew tewang bi awakî welê bi serenavên xwe ve bûne ko jê tucaran venaqetin, herwekî ji rayekê bêjeyê biwan. Digel vê hindê kurdmancên ko di zmên de mihafezekar in guh didin vê ferqê û nabêjin « Gulê hat » lê dibêjin « Gul hat » û bi tenê di dema bankirinê de dibêjin « Gulê! were ».

4 - Me gotî bû ko « o » û « ê » tewangên bankirinê ne. Lê carina van tewangan li şûna tewangên adetî jî dixebitinin. Mesela em navê « Miş » bibin. Ev navê ha, naveki mêran e; ji lewre diviya bû bi « i » yê bihata tewandin û li gora qeyda gelemper diviya bû mirov bibêje: « Miş hat, Mişi got, Mişo were ». Lê herwekî me got « o » yê dixin şûna « i » yê û dibêjin: « Miş hat, Mişo got, Mişo were ». Wek neticeke vê qeydê navên ko bi « o » yê diqedin bi tu awayî nayine tewandin. Ji lewre mirov dikare bibêje « Bozên got » lê nikare bibêje « Ĥeco got » divêt bibêje « Ĥaco got » ji ber ko navê « Ĥaco » bi « o » yê temam dibe.

5 - Heye ko di lîsteyên me de navin peyda bibin ko di eslê xwe de ne bi kurdî ne; lê kurdmancan ew bi awakî welê xebitandine ko dirfê zarê me bi wan ketiye û ew hatine kurdandin. Di zmên de her tiştê kurdandî bi kurdî ye û ew yê me ye.

BAVÊ CEMŞÎD Û SÎNEMXANÊ

## DELALIYA DELALAN

Adaptation d'un poême de
Charle Baudelaire « Le Balcon »

Stêra biserhatiyên min, delaliya delalan !!
Tu bihara ber dilê min i;
Bextiyarî û xweşiya min ji te ye;
Ji te ye siûd û serbilindahiya min.
Şiriniya ramûsan, destpaşil û dilxweşiya min,
ji bo te ye!
Têu bira te ew rojên bextiyariyê;
Ronikahiya mala me û xweşî û hênikahiya
ber êvarê?
Stêra biserhatiyên min, delaliya delalan !!

*
* *

Ber êvarî, wadê tirêjên roavayî,
Sor û zer dibin !!
Mina şewq û pêtiya tiŝikên dîwanxanan;
Me xwe aveti bû ber siha şehneşînê.
Û xavikeke zeresor,
Xwe ber rûyê dinyayê da bû,
Di wê demê de sing û berê te,
Xema dilê min direvandin.,
Û dilê te ê xurt û nerm,
Çiqas niziki min dibû û ez dihewandim,
Me ji dilketina xwe re distirand,
Û dinehwirand.
Ber êvarî wadê tirêjên roavayî dibin sor û zer.

*
* *

Di êvarên germ de roj çiqas delal e;
Dinya dibe fireh û pehin,,
Dil dibe xurt û bi rewa
Min xwe li ser te de xwar dikir delaliya delalan
Û min bihna ciwanî û rindbûna te bihn dikir;
Di êvarên germ de roj çiqas delal e.

*
* *

Şev dibû tarî, li ber me dibû beden.
Û di reşika şevê de min reşahiya çavê te didît,
Û min bihna keçînî û çelengiya te bihn dikir.
Navkefên destên min bû bûn dergûşa piyên te;
Şev dibû tarî û li ber me dibû beden.

*
* *

Wan dem û rojên bihurî ez tînim bîra xwe
Demên ko min serê xwe da bû ser çoka te,
Û bi nêrîna çavê te
Dinya li min dibû bihar,
Heşin dibûn gul û dar.
Tu î şahî û şabûnî,
Tu î xemrevîn û dilxweşî;
Wan dem û rojên bihurî ez tînim bîra xwe.

*
* *

Me li ser dilketina xwe sond dixwar
Em sondayê bev bûn . . .

## STÛNA XWENDEVANAN

P—Gelo rast e ko em kurd ji nijadê arî ne? Çi kurd li welatê Ûris hene û ew di çi halî de ne?

Şam, Taxa Kurdan. SIBHIYÊ DIYARBEKRÎ

C—Belê em kurd ji nijadê arî ne. Herçî pisporên nijadan hene di vê babetê de yek in. Yanî tev de dibêjin ko kurd ji nijadê arî ne û di rohelatê nizing de wesfên arîtiyê ji hevnijadên xwe ên din çêtir û bêtir hilanîne.

Kurd arînijad û arîzman in jî; yanî zmanê wan jî zmanekî arî ye; û bi zmanekî arî dipeyivin. Û ew, yanî kurd di kaniya zmanê ariyan de rûniştî ne. Li gora hin zmanasan dergûşa zmanên arî ew welat e ko dikeve navbera Diyarbekir û Xuristanê « Xuresan ». Nivê vî welatî kurdistan e û nivê din jî Ecemistan e. Belê zmanas dibêjin ko ev der welatê zmanên arî ne û zmanên arî tev de ji vî welatî li dinyayê belav bûne; û di nav xwe de bi çend birên bingehîn lêk vebûne: slav, latîn, german, yewnan. Mirovatiya van zmanên arî hetanî îro jî xuya ye; rexma ko berî hezar salan ji dergûşa xwe rabûne; bi dinyayê ketine û nema vegeriyane kaniya xwe. Ev mirovatî ne bi tenê di gramêr û di bastûrê de, lê di hin bejeyan de jî eşkere dibin. Ev in çend mîsal:

Lêv (bi kurdî) leb (bi farisî) lip (bi ingilîzî) lippe - lîpe (bi elmanî).

Pol (bi kurdî) épaule - epol (bi frensizî).

Ejnû (bi kurdî) genou-jenû (bi frensizî) bi kurdî jenû jî dibêjin.

Dlop (bi kurdî) drop (bi ingilîzî) tropfen (bi elmanî).

Nav (bi kurdî) nam (bi farisî) nom (bi frensizî) name (bi ingilîzî) name (bi elmanî) onoma (bi yewnanî).

No (bi kurdî) no (bi ingilîzî) non (bi frensizî) nein (bi elmanî).

Tu (bi kurdî) tu (bi frensizî) du (bi elmmanî).

Nih, new, nû (bi kurdî) new (bi ingilîzî) neuf - nöf (bi frenşizî) neu - noy (bi elmanî).

Neh (bi kurdî) neuf - nöf (bi frensizî) neun - noyn (bi elmanî) nine - neyn (bi ingilîzî).

Kok (bi kurdî) coquet - kokê (bi frensizî).

Hesin, hêsin (bi kurdî) eizen - eyzen (bi elmanî) ahen (bi farisî)

Par (bi kurdî) part - par (bi frensizî).

Çêlî (bi kurdî) child - çild (bi ingilîzî).

Hirç, wirç (bi kurdî) ours - ûrs (bi frensizî).

Mêş (bi kurdî) mouche - mûş (bi frensizî)

Stêr (bi kurdî) star (bi ingilîzî) stern (bi elmanî) astre (bi frensizî) astron (bi yewnanî) stella (bi talyanî) sitare (bi farisî).

Germ (bi kurdî) warm (bi elmanî) warm (bi ingilîzî).

Sin (bi kurdî) cime - sîm (bi frensizî).

Braştin (bi kurdî) braten - bratin (bi elmanî).

Kurm (bi kurdî) wurm (bi elmanî) worm (bi ingilîzî).

Tarî (bi kurdî) tarik (bi farisî) dark (bi ingilîzî).

Ber (bi kurdî) piere - pyêr (bi frensizî)

Ard (bi kurdî) artos (bi yewnanî).

Ev mîsalên ha bi tenê ew bêje ne ko bi derbekê de têne birê. Lê heke mirov zmanê kurdî û zmanên din ên arî danîn ber hev û hûr li wan mêze kir wê bête dîtin ko mirovatiya van zmanan digel zmanê me gelek kûr û nizing e. Ji xwe herçî kurdî û farisî, ewçend nizingî hev in ko ev her du zman wek du zarên zmanekî dikarin bêne hesibandin. Bi ferqa ko farisiyê ji kurdiyê bêtir hikmê erebiyê xwariye û di bin tehsîra wê de maye.

Ji milê din Mîrza Sibhî dipirse: Çi kurd li welatê ûris hene; û ew di çi halî de ne?

Herwekî xwendevanên me dizanin piraniya kurdan bindestiya sê dewletan dikin: Iraq, Tirkiye û Ecemistan. Li bakurê Sûriyê û li ser tixubê tirkan ji Cezîra Mîr Şeref heta roavayê Çiyayê kurdmancan, di drêjahiya vê xetê de jî birek kurd hene. Herçî welatê ûris, di wî welatî de kurdmanc kêm in. Dibêjin ko nifûsa wan di ser sed hezarî ye. Piraniya kurdên welatê ûris di Filestanê de ye. Ji ber ko baskekî welatê serhedan digehe Filestanê. Ên mayîn li welatê Oevqasê belav bûne: Gurcistan û Azerbeycan.

---

O! ew ramûsanên ji dil û can!!
O! ew nalînên kûr û dûr...

∴

Gelo dilketina me a borî,
Vedigere ciwaniya xwe a berê??
Mina roja ko diçe ber ava
Û li rohelatî hiltê
O! Ew ramûsanên ji dil û can...
O! Ew nalînên kûr û dûr.

SEYDAYÊ GEROK

Dîgel vê kindikbûnê, di warê çanda kurdî de kurdmancên welatê ûris ji kurdên mayîn peşdetir in. Ji xwe carekê, di hejmara Hawarê a heştan de me qala kurdên Rewanê û xebata wan a kultûrî kiri bû.

Ev deh sal in di gundên kurdmancên Qevqasê de dibistanên xweser hene û zaroyên kurdmancan, çi keç çi law, di wan dibistanan de bi kurdmancî dixwînin. Ji van pê ve li Rewanê, ji bo kurdmancan, dibistaneke mamostan heye. Di wê dibistanê de jî her ilm û fen bi kurdmancî têne xmendin. Xortên ko ji dibistana Rewanê şehadetnamê digirin dibin mamosteyên gundan.

Ji xortên dibistana Rewanê, ên bijarte diçin Moskoyê û di dibistanên ûris ên mezin de bi rûsi dixwînin û lîsansê digirin. Ev lîsansî vedigerin Rewanê û dersa mamosteyên kurd bi kurdî dibêjin.

Kurdên Rewanê di van deh salan de bi sedan kitêb belav kirine û hero jî hinên din belav dikin. Ji kitêban pê ve rojnameke wan jî heye, Riya teze.

✶ ✫ ✫

Ezbenî !

Îro ji postê pênc ḧeb Hawar li ser navê min hatine. Ez hêvî dikim ji niho û pê de ji min bi tenê re hejmarekê bişînе. Ji ber ko kes Hawarê naxwîne.

Mektele : 24, 7, 1941 HEBEŞ SMAÎN

Vitika Mîrza Ḧebeş Smaîn peyameke tehil û şêrîn e. Şêrîn e, ji ber ko ew rastiyê dibje. Lêbelê ew rastî bi xwe tehil e. Belê Mirza Smaîn ji xwediyê Hawarê hêvî dike ko jê re ji yekê bêtir Hawaran neşîne. Çire? Çimkî di welatê wî de kes Hawarê naxwîne û pê hendewar nabe. Lê jê re hejmarek divêt ji ber ko ew bi xwe dixwîne; û ji lewre naxwaze Hawara ko bi hezar dişwariyî bi der têt di destên nezanan de telef bihe û bête çirandin.

Lê herweki me got, ev rasti bi xwe tehl e. Mektele û kaniya Ereban di Sûriyê de merkezine kurdmancan in. Ew erd bireki deşta Sirûcê ye; meqamê begler û axeler û eşîran e. Ma rewayî ḧeq e ko Mîrza Smaîl di welatekî kurdmancan de ji çar hejmarên Hawarê re xwendevanan peyda nekit. Heke di dora kaniyê de hêj ew kurdên xwenda nînin jê bi tenê mezinên kurdan berpirsiyar in. Emê li hêviya pêjna dengê xwe bimînin.

HAWAR

## REWŞA DINYAYÊ

ŞERÊ SÛRIYÊ — Herwekî xwendevanên me dizanin li 8ê Hizêranê şer keti bû erdên Sûriye û Libnanê ji. Ji ber sebebên ko me di hejmara sihi de goti bû ingilîzan û frensizên golîst li heştê Hizêranê ji aliyê nîvro de yanî ji Felestînê drêjî Sûriyê kirin.

Ordiwa sondxwariyan xwe berda bû ser du baskan. Baskê ko ji Derheyê dihat berê xwe da bû Şamê. Baskê din, yê ko bi ser Seyda û Merceiyûnê ve dihat, berê xwe da bû Bêrûtê.

Baskê rastê, baskê ko ji Derbeyê dihat, di Ezrehê re û direjkî kete welêt û di Xebaxibê de qerar girt. Eskerên Merêşal ji ber dikişiyan. Wer xuya dikir ko evan asêgeha xwe li ser çiyayên Kiswê çêkiri bû. Sondxwariyan ji Xebaxibê direjî Kiswê dikir. Eskerên Vişiyê li ber xwe didan. Hêdî hêdî şer dadikêt rasta Xotayê. Topçiyên frensizan ji nav darên bexçeyên Şamê û ji çiyayê Qesyûnê, di ser Mezê, Rebwê û bajarê Şamê re agir dikirin. Sondxwarî ji milê din, di Qunêtirê re hati bûn Cidêdê. Heçko şer di nav Şamê de çêdibû; lê hêj gule rast di rast ne diketin ê. Lê tirs hehû ko bikevin ê.

Li 18ê Hizêranê dengê tifing û mitralyozan ewçend nizing bû bûn ko mirov digot qey şer gihaştiye kûçe û kolanên bajêr. Bêdiro, êvarkî di bexçeyên navbera Mezê û keywanê de eskerên hindi û frensizên Şamê li hev dixistin.

Lê piştî eşayê dengê top û tifing û mitralyozan, ji nişkekê ve hatine birin. Xelkê digot qey ingiliz ketine bajêr û freusiz çûne rayê. Sibetirê xelk di nav bajêr de li ingilîzan digeriyan, lê ew peyda ne dikirin. Bi tenê balafirên ingilîzi di ser bajêr re firiyan û hin beyaname avêtin ê. Bi van beyanaman general Wilson, serfermandarê leşkerên sondxwariyan, ji general Denz dixwest ko bajarê Şamê bajarê berdayî ilan bike û eskerên xwe jê bikişîne. Ji ber ko eskerên sondxwariyan keti bûn devê deriyê bajêr û heke şer di dora Şamê de dom bikira ehalî wê bihatan kuştin. Ji xwe şer ji şevêdî ve sekinî bû. Lê ingilîz ne diketin bajêr, qey hêj dûr bûn. Lê herçî eskerên Vişiyê, terka Şamê didan û bajar vala dikirin. Bi saetan ve top, tang, kemyon di cada Bexdê re derbas dibûn, berê xwe didan riya Himsê. Lê igiliz ne dihatin. Bajar mideke xweş vala ma. Piştî nîvro hew te dît frensîzên ko berî nîvro ji

Şamê rabû bûn, vegeriyan kozik û asêgehên xwe û ber bi êvarê şer ji nû ve dest pê kir.

Ma çi li frensiz û ingilizan qewimî bû? Paşê hate seh kirin ko êvara hejdehê Hizêranê mifrizeyek eskerên hindî, qederê 400-500 peya, gibaşti bû Mezeyê û li bexçeyên navbera Mezê û Keywanê belav bû bû. Frensizan ew hêsir girtin. Lê frensizan ne dizanî bû ko ew mifrizekî biserxwe ye. Wan digot qey pêşdarê ordiwa dijmin e û dijmin, herwekî beyanama general Wilson dida zanîn, gihaştiye devê deriyê Şamê û kete Keywanê. Li ser vê yekê frensizan terka Şamê da. Lê gava dîtin ko şaş in û ingilîz hêj ji bajêr dûr in bi şûn de vegeriyan û dest bi şerê xwe kirin. Sondxwariyan li midafihên Şamê dişidandi. Li 20ê Hizêranê topçiyên ingilîzî topên xwe li rasta Mezeyê danîn û li kelehên Mezê, Rabwê û Mihaciran dixistin. Ber bi êvarê şer xweş kirin. Carina gule diketin nav bajêr, nemaze tara mihaciran Hin berikên tifing û mitralyozan jî ketine serê banan. Ji ehaliyan bi tenê du peya hatine kuştin û çendek jî birîndar bûn.

Sibetirê, li 21ê Hizêranê General Denz, bajarê Şamê bajarê berdayî îlan kir û frensiz jê kişiyan. Wextê nîvro ingilîz û golîst ketine Şamê. Şer ji derve dom dikir.

Ingilîzan û serekê frensizên golîst general Degol istiqlala Sûriyê û Libnanê îlan kirin û wad dan wan dewletan ko piştî qedandina şerê Sûriyê frensizên golist bi wan re mia-hedeyên dostî û hevalbendiyê imza bikin.

Wê şevê xelkê Şamê bê tirs û lerz ketî bûn nav cihan. Lê bi sariya sibê ve bombeke ecêb teqiya; çendên din dane pey. Balafirek an dilowan li Şamê xistî bû. Çi balafir bûn, ne hate seh kirin Hinan digot elmanî bûn. Bombe li dora Mizgofta Emewî û Tirba Selahedin keti bûn. Ji bîstan bêtir zanî hilweşiyan; 82 peya hatin kuştin û ji sedî bêtir birindar bûn.

Piştî vegirtina Şamê ingilîzan zora xwe da eniya Bêrûtê. Frensizan di wê qadê de gelek li ber xwe dida û bi xurtî şer dikir.

Pêşdetir, ingilîzan ji Iraqê jî dirêjî Sûriyê bûn û ketin bakurê welêt Qewetên wan ên şêkanîkî berê xwe dan Tidmirê û lê wer batin, û piştî mihasereke sêzderoji midafihên Tidmirê 300 peya teslîm bûn.

Ji milê din eskerên ingilîzî yên ko ji Iraqê hatî bûn ketin Dêra-Zorê, Reqê û Qamişlokê û berê ywe dan Heleb û Cerablisê.

Eskerên ko Tidmir zemt kiri bûn ber bi Himsê meşiyan. Frensizên golist jî piştî vegertina Şamê berê xwe dan bakur. Ewan jî piştî ko Nebek xistine destên xwe Himis ji xwe re kirine armanc. Baskekî din ji Şamê qesta Bêrûtê kiri bû û li ser riya Bêrûtê giha bû Dîmasê. Eskerên Merêşal di vê qadê de jî gelek li ber xwe dan û şerine no lî bakur û li roavayê Şamê çêbûn.

Li 7ê Tîrmehê balafirên ingilîzî di peravên Tirkiyê de vaporeke frensizî, bi navê « Sêndidyê » bin av kirin. Di wê vaporê de ji bo frensizên Sûriyê çek û posat û hin zabit jî hebûn; dihatin hawara ordiwa rohelat.

Di eniya Bêrûtê de eskerên Merêşal piştî ko ji Seydayê kişiyan; li ser xeta Damûrê asê bû bûn. Damûr, Kisweya Bêrûtê bû. Ji xwe Şam û Bêrût her du jî ji tixûbê Felestînê bi nîzikahî ve not kîlometir dûr in. Piştî şerine mezin eskerên ewistralî xeta Damûrê di hin cihan de qul kirin; lê xet bi temamî ne ket destên wan. Eskerên Merêşal bi mêranî xwe li ber dijminên xwe digirt û rê ne dida wan ko bikevin Bêrûtê.

Wer dixuye ko piştî binavkirina Sêndidyê tu hêviya general Denz ne ma bû. Di roja xwe de stola frensizî ji Bêrûtê rabû. Çend perçeyên lez berê xwe dan Frensê; hinên din jî çûn bendera Skenderonê. Tirkan ew vapor ji çek kirin û esker û deryevan girtin.

Li 8ê Tîrmehê paşî nîvro, Mister Çorçil di Meclisê de da zanîn ko general Denz mitareke xwestiye. Di roja xwe de êvarê saet heştan de general Wilson bi radyowa Felestînê ji general Denz re dida zanîn ko eskerên wî bi diyarî Bêrûtê ketine û jê dixwest ko Bêrûtê bajarê berdayî îlan bike û eskerên xwe jê bikişînê. Denz li general Wilson venegarand û şer di pêşiya Bêrûtê de dom kir.

Ingilîzan pêşnihada yanî teklîfa general Denz qebûl kir û şertên çêkdaniyê yanî mitarekê jê re dan zanîn. Lê hikûmeta Merêşal şertên ingilîzan qebûl ne kirin û ew bi şûn de avêtin. Digel vê hindê Vişiyê destûr da general Denz û jê re da zanîn ko ji bo qedandina şerê Sûriyê hikûmeta Merêşal hemî selahiyet xistine destên wî. Li ser vê yekê general Denz rast bi rast bi general Wilson re kete mizakerê û li 11ê Tîrmehê

berî nîvro niminendeyên general Denz çûne Ekayê, qerargeha general Wilson.

Li 12ê êvarê di Ekayê de mitarekename bi tîpên navên nimînendeyên her du aliyan ên pêşîn hate imza kirin. Ji xwe li nîvê şevê di hemî xetên şer de her du aliyan agir û brûskên xwe betal kiri bûn.

Di dema imzakirina çekdaniyê de tiştekî ecêb qewimî. Gava niminendeyê general Denz, general Verdiyak qelem girt destê xwe û kir ko peymanê imza bike; çira wan elêktrik vemirî û heyeta mitarekê di tariyê de ma. Vêca rabûn çend kemyon anîn ber pencereyên odê, mitosîklek jî xistin devê dêrî û li ber ronahiya fanosên wan mitarekename imza kirin. Bi vî awayî şerê Sûriyê, yê ko 34 rojan dom kir, temam bû.

General Verdiyak mitarekenameke gelek bi şeref imza kir. General Wilson bi xwe pesnê eskerên Merêşal da; û çekên wan bi wan re hişt. Li gora mitarekenamê ji eskerên ordiwa rohelat heçî ko dixwazin wê bikarin derbasî aliyê general Degol bibin û herçî, naxwazin wê vegerin Frensê.

Li 14ê Tîrmehê, wextê nîvro ingiliz ketine Bêrûtê û bajarên Libnan û Sûriyê ên din.

ŞERÊ ETLANTÎKÊ – Şerê behra Etlantikê weke berê dom dike. Vê paşiyê di vê qada şer de bûyereke girane hate pê. Li bakurê roavayê Etlantîkê giravek heye, jê re dibêjin Îslande. Ev girav dikeve navbera Ewropê û Emêrikayê û li ser rê ye. Yanî yê ko girav di destê wî de ye, çûn û hatina vaporan di navbera Ewrope û Emêrikayê de çêtir dikare bihemîne.

Îslande aidî Denîmerkê bû. Roja ko elmanan avête ser Denîmerkê, 9 Nîsan 1940, ingilîzan jî esker derêxist Îslandê û tê de cih bûn. Herwekî xwendevanên me dizanin Emêrîke bi her awayî û wek hevalbendekî arîkariya Ingilterê dike. Bi tenê hêj rast bi rast ne ketiye şer. Emêrîke berçî vaporên talyanî, elmanî û vaporên dewletên ko erdên wan elmanan vegertine, tev de zemt kirine. Ew vapor di benderine emêrîkanî de bûn. Emêrîkê hin ji van vaporan dane Ingilterê.

Li 8ê Tîrmehê reîscimhûrê Emêrîkê mister Rûzwelt da zanîn ko eskerên emerîkanî ketine Îslandê û vaporine stola Emerîkê di benderên Îslandê de lenger avêtine. Bi vî awayî eskerên emêrîkanî ji bo cara pêşîn ji welatê xwe rabûne û ketine qada şerê ewropayî. Lê hêj tifing ne teqandine. Lê bêî teqandina tifingê jî ev esker bi kêrî Ingilterê tên.

## DILJARIYEK

kohê xem wer bû li min wenda kirim cewr û ezab
Dil bû çênî, pare pare ma li cergê sed kulab.
Tercima halê me kurdan bête awaz û xezel,
Ilmê derya wer bibîne xwîn dibare afitab.
Mifteya işqê werinim dergeyê mewzûn vebe
Xortê nûhatî bi xame da şiyar bin ji xewab.
Aweyê şihran me danî pir bi inwan û edeb,
Birca êvîna me îro hilvedaye pir xitab.
Ayê kurdan îro nîne hem li erd û ta sema;
Lewre deng û gaziya me nayê şerhê sed kitab.
Mem ji bo Zînê li zîndan sihtiye ten û giyan;
Pîra Heyzebûn diyar he xêr xwa kî bê cewab.
Perda şahî me remûza ta ko azadî hebe;
Îro pesnê xem rewa ye not qanûn û rebab;
Ev riya qewmî ko dûr e, pir cefa ye hat û bat.
Bi hezaran reng vedane wan bi xwînê bê hesab,
Şam û sûrî bo me tal e, av vexwim wek henzel e;
Ava heywên Dicle pak e, şekir û qend û gulab.
Dêrazorê ta bi Qersê erdê bavê min heye;
Dewsa avê xwîn rewan e, birc û saran tev xerab.
Jar û pejmirde dinalin tev ko em pergende ne,
B' tenê Heşyar şibhî mûman nav û ceger bûn kebab.

HEŞYAR

ŞERÊ ÛRIS Û ELMANAN — Herwekî pisporên şer dibêjin ev şer, şerê dinyayê ê mezintir e. Bi rastî gava mirov dide eqlê xwe lê ecêbmayî dimîne. Di wê qadê de neh milyon mirov li hev dixin; şeş milyon ûris û sê milyon elman. Welê dixuye ko Ûris, ji berê de, xwe ji bona vî şerî kar kiri bû. Di destên Ûris de çek û her texlît hesincawên ceng zehf in; nemaze tang. Tangên ûris gelek mezin in jî. Hin tangên wî 120 ton in, keleheke gerok û hesinî. Divêt balafirên wî jî zehf bin. Eskerên wî ên siwarî jî pir in. Elman bi drêjkî ji hezar kîlomêtrî bêtir ketine erdê welatê ûris. Îro di dora Smolenskê de şerekî mezin çêdibe.

Li gora fikra pisporên eskerî ev şer şerê qethî ye; yanî yê ko di vî şerî de bişkê hesêb zora wî wê here, û wê nema bikare xwe li ber dijminê xwe bigire.

Di vî şerî de Ingiltere û Emêrîke li pişta Ûris rabûn; ji ber ko Ûris bûye dijminê dijminê wan û bi neticê ve bû dostê wan.

Van her du dewletên mezin wad dan Ûris ko bi her awayî wê arîkariya wî bikin.

Li 12ê Tîrmehê di navbera Ûris û ingilîzan de peymanek hate imza kirin. Li gora

vê peymanê her du dewlet wê arikariya hev bikin û'ev her du dewlet bêî hev silih nakin.

Şerê ûris ne bi tenê ji bo ûrisan lê ji bo ingilizan jî geleki mihim e û ingiliz chemeyeteke mezin didin vê meselê. Ajansan çend caran qal kiriye ko Ingiltere di Behra Manşe re wê esker derîne beja Ewropayê û dreji Ejmanyayê bike. Hin cerideyên ingilizi di vê babetê de dibêjin ko jê çêtir firsend bi dest nakeve. Ji ber ko elman bi ûris mijûl in û ji lewre di roavê de qewetên wî kêm in. Lê heta niho ingilîzan dest bi vî îşî ne kirine.

Elmanan jî li rohelatê dûr hevalbendek heye: Japonye. Di navbera elman, talyan û japonan de tifaqeq heye: tifaqa sêbendin. Li gora vê tifaqê heke dewletek, ji dewletên ko îro şerê talyan û elmanan dikin pê ve, bi wan re kete şer hingê japon ji şerê wê dewletê bike. Herkesî digot ew dewlet Emêrike ye; Ûris ne dihate bîrê. Ji xwe di meha Nisana 1941ê de ûris û japonan ji tifaqek imza kiri bû. Li gora vê tifaqê heke yek ji van her du dewletan bi dewleteke din biketa şer, a din di wî şeri de diviya bû bêteref bimîne. Ji ber van sebeban rewşa japonan zehmet e. Ji ber ko bi her du aliyan re girêdayî ne.

Li 17ê Tîrmehê wezareta Japonyayê istifa kir. Lê disan mîr Konoyê hikûmet teşkîl kir, lê Mîrza Metçiwoke yê ko tifaqa Rûs-û-japonî imza kiri bû ne ket hikûmeta nû. Wezîrê xariciyê ê nû gava bi rojnamenivisan re xeber dida bi awakî welê ştexilî ko jê dihate seh kirin ko hikûmeta nû xwe bi tifiqa sêbendîn re girêdayî dihesibîne lê guh nadete tifaqa Rûs - û - Japonî.

Li gora nûçeyên paşîn japon esker ditîne ser têxûbên ûris û xwe kar dike.

MESELA HINDIÇÎNIYÊ — Hindiçînî li rohelatê nivroyê Hindistanê misteinlekeke frensizî ye. Di bin wê re nîngirava Melegê ber bi girava Sometrê dirêj dibe. Di navbera Melegê û Sometrê de avtengek heye, jê re avtenga Melegê dibêjin Di devê vê avtengê de giraveke gelek kiçik û ji beja Melegê 800 mêtir dûr giravek heye; navê wê Sengepor e. Sengepor ji weke Cebeltariqê milteke behran e; û ew jî di destên ingilîzan de ye. Herçî vaporên ko ji Ewistralyê, Nyûzelandiyê û bi tevayî ji Pesîfîkê tên û qesta Behra - sor dikin divêt di wê avtengê re biborin. Ji milê din giravên holendî yên ko bi navê Hindistana holendî nas in, ji roavê ber bi rohelê û pey hev di bin wê avtengê re ne. Hindistana holendî bi her texlît madenên xwe, nemze bi petrola xwe goleki hêja ye. Di welatê japonan de hesêb petrol nine. Japon petrola xwe ji Emêrîkê û ji Hindistana holendî ditînin.

Li 19ê Tîrmehê di navbera Frensê û Japonyayê de lihevhatinek hate imza kirin. Li gora vê lihevhatinê Frense û Japonye Hindiçîniyê pev re midafehe bikin. Piştî vê lihevhatinê eskerên japon ketine Hindiçîniyê û bi vî awayî nizingî li Sêngeporê û Hindistana holendî kirin.

Ingilterê û Emêrikayê ev lihevhatin protesto kirin; dest danîn ser pereyên japonan yên ko di banqên emêrîkan i û ingilizi de ne. Ji milê din Rûzwelt emir da ko ji Emêrîkê tu tîşt nayete rêkirin Japonyayê. Rûzwelt şandina petrolê jî bend kir û got: heta niho me ji japonan re petrol dida da ko japon bi hênceta petrolê dirêjî Hindistana holendî nekin.

Par japonan bi Hindistana holendî re tifaqeke iqtisadî imza kiri bû. Li gora vê tifaqê Hindistana holendî salê (1 800 000) ton petrol bidaya Japonyê. Piştî mesela Hindiçîniyê Hindistana holendî ciwab da mişteriyê xwe û jê re da zanîn ko tu petrolê nade japonan.

Nûçeyên paşin dibêjin ko di rohelatê dûr de weziyet xedar e. Ji aliki Japon, ji aliyê din Ingiltere û Emêrîke xwe kar dikin û neçê neçê li hevdû dinêrin. Heye ko di wê qadê de şerine behrî û mezin çêbibın, Ev her sê dewlet ji yani Japon, Ingiltere û Emêrîke dewletîne behrî ne.

Şam: 27 Tîrmeh 1941, NÊREVAN

## BINGEHÊN GRAMÊRA KURDMANCÎ

BI NAVÊ YEZDANÊ PAK Ê DILOVAN Û MIHIRVAN

— 5 —

44 — Mana û zayend: Bêjeyin hene ko gava mana wan diguhêre zayendê wan jî têtê guhartin. Mesela « dar » gava bi mana dara heşîn e mê ye « Vê darê ji min re daweşîne ». Lê ev « dar » bi xwe gava bi mana darê hişk e nêr e « Vî darî ji min re bişkênîne ».

45 — Di zayendê hin navdêrên ko tiştine nerihber dinimînin kurdmanc ne yek in. Hinan ew nêr, hinên din ew mê hesibandine. Ji wan bêjeyan tiştê ko heta niho me kari bû em bisenifînin bêjeyên jêrîn in. Heye ko hinên din jî peyda bibin: Çax, wext, mixdar, qeder, sîng, kursî, balgih, xeber.

46 — Wezîfeyên navdêrê: Navdêr di komekê de gelek wezîfan dibînin. Bi kurtî ên bingehîn ev in:

kirar: Soro îro ji bajêr hat.

Bireserê lêkerê: Min Soro dît. Min ji Soro re got.

Bi reserê navdêreke din: kitêba Soro nû ye.

Pêveberê lêkerê: Xerîbî ne tu çek e.

## MÊJER

47 — Di gramêrê de mêjer ew xweseriya navdêran e ko navdêr pê heyhereke bi tenê an heyberine gelêr dikarin şanî bidin. Bi gotinên din mêjer yekejmarî û gelejmariya navdêran şanî me dike û em pê dizanin gelo di qisetê de qala heybereke bi tenê dikin an ji yekê bêtir. Heke navdêr heybereke bi tenê dinimîne hingê ew yekejmar e; û heke ji yekê bêtir dinimîne hingê ew gelejmar e.

48 — Yekejmar: Navdêr yekejmar e, gava ew ji tişt, mirov û heywanên ko dinimine yeki bi tenê raberî me dike. Navdêrên komekên jêrîn yekejmar in: « Mîr hat. Ez hespekî dibînin. Ez çiyayê bilind dibînim ». Ji ber ko ew ji mîran mirekî, ji hespan hespekî û ji çiyan çiyakî bi tenê şanî dikin

49 — Gelejmar: Navdêr gelejmar e, gava ew ji tişt, mirov û heywanên ko dinimine ji yekî bêtir raberî me dike. Navdêrên komekên jêrîn golejmar in: « Mîr hatin. Ez hespina dibînim. Ez çiyayên bilind dibînim ». Ji ber ko ew ji miran çend miran, ji hespan çend hespan û ji çiyan çend çiyan şanî dikin.

50 — Herwekî ji misalên madeyên 48 û 49 dixuye di zmanê kurdmancî de yekejmarî û gelejmariya navdêran bi çend awayên têvel xuya dibin. Ew nemaze ji mêjerê lêker, tewang û veqetandekê dixuyin.

| YEKEJMAR | GELEJMAR |
|---|---|
| Ev mehîn e. | Ev mehîn in. |
| Min mehîn dît. | Min mehîn dîtin. |
| Ez mehînê dibînim. | Ez mehînan dibînim. |
| Ez mehînekê dibînim. | Ey mehînina dibînim. |
| Ezê ji te re mehîneke qenc peyda bikim. | Ezê ji te re mehînine qenc peyda bikim. |
| Ev kurê kê ye ? | Ev kurên kê ne ? |
| Mehînê xwar. | Mehînan xwar. |
| Tu vî hespî dibînî ? | Tu van hespan dibînî? |

## CHANT D'AUTOMNE

Le numéro 28 de "Hawar" contenait le texte et la traduction de deux "paîzok" botaniens. Nous publions aujourd'hui un nouveau chant d'automne, recueilli cette fois-ci dans la tribu des Havérkan. Le ton de cette composition, plus léger et plus gracieux, est quelque peu différent de celui des deux premières.

(1)

Paîzê li min dest da, min ne kir kar û bara Zivistanê.
Çiyayê bilind dixwazin mij û moranê.
Beriya Xelef axa dixwazê reşîşeke hûrbaranê,
Ji xêra Xwedê ra, ez bibiwama dîkekî por, ji hewlahewla nêçîrvana,
Mi xwe avêti bana hevrîngekê, ji ên kafirzemanê.

(2)

Sê teyra di ser me re siwan digirtin,
Yek qaz e, yek qumrî, yek seqer e,
Sê hingulîsk di destê xelkê delal de ne,
Yek zêr e, yek zîv e, yek elmasekî bi cewher e.
Malê xelkê delal danî bûn di bin malê me re.
Şeva nîvê şevê, ez çûme tewafa sîng û bera.
Mi lê meyizand, gava matorekî mêra wî li ber e.

(3)

Dengek hate ji ezmana,
Hina digo: «Milyaket in, ketine piştî ewranal»
Hina digo: « Qîrêna Memê şivanal »
Hina digo: « Dengê Ristem Pehlevan e! »
Hina digo: « Cindiyê Bota kar bû ji zozanal»
Hina digo: « Beranê kovî ne, li serê Sîpanê Xelatê bi qloça li hev didanal »
Ez bûm ser tihêla rastê,
Ez qulibtim ser tihêla çepê.
Qirên diketi toq û bênî û kehrebana,
Li ser sîng û berê min ê gewr û boz didana.

(4)

Xaliqo, ji te sibhani,

---

51 — Gelejmariya serenavan: Ji ber ko serenav xwserî tiştekî, miroveki an heywanekî ne, û pê bi tenê ew bi nav dibin, di rastiyê de serenav tucaran nabin gelejmar. Lê bi mecazî û ji bo mîsalê bi gelejmarî têne gotin. Herwekî: Ez ji te re Melayên Cizerî, Ehmedên Xanî û Feqehên teyran ji kû peyda bikim. Tu di beyabanên bêdar û belg de li Bîngolan digerî. ( dûmahîk heye )

Hingê ez li wê bûm, çaxa riknê Birca Belek danîn,
Serhoste lêdikir, şakirdiya kevir dibirne banî.
Ya serhoste, min divê ti qesrekê ji min û xelkê delal ra çêkî.
Şekir nebat ji malê ne,
Gul û rihan ji bihnê ne,
Keç, werdek ji golê kevzê ne.

(5)

Kesî ne dî masîk neqeba di behra de bimrê ji tihna.
Ya serhoste, min divê ti xizêmekê çêkî ji dostê ra,
Ti ne deynî ser sindana,
Ti lênexî bi çakûçana,
Ti bigrî bi hesretî mewlana,
Ti bikşînî bi mijgulê çavana,
Ji bona xelkê delal li pozê xwe ê çilakî xî,
Rojê êd û daweta, da xirab nebî cihê remîsana.

(1)

LA JEUNE FILLE.
L'automne m'a surprise, je ne me suis pas préparée pour l'hiver
Les hautes montagnes réclament brume et brouillard,
Et la plaine de Khalaf Agha ( 1 ), une averse.
Si j'étais, par la grace de Dieu, un francolin que les chasseurs poursuivent à grands cris,
Je me réfugierais dans un îlot inaccessible.

(2)

LE JEUNE HOMME.
Trois oiseaux me faisaient un dais de leurs ailes,
L'un était une oie sauvage, l'autre une tourterelle, le troisième un faucon.
Il y a trois bagues aux doigts du joli monde(2),
L'une est en or, l'autre, d'argent, et la troisième, un diamant limpide.
Les tentes du joli monde campaient en dessous des notres.
A minuit, j'allai en pélerinage vers sa poitrine et ses seins.
Je les contemplai, surgit un grand benêt !

(3)

LA JEUNE FILLE.
Un cri vint du ciel.
Les uns disaient: « Ce sont les anges derriére les nuages ! ».

(I) La pleine de Nissibine, ou Khlaf agha, chef réputé livra bataille aux Arabes, prés de Tell Khalaf.

(2) La bien - aimée.

Les autres: « C'est la voix de Memé chevan(1).
D'autres: « C'est celle de Rustem, le héros»
Certains: « Les guerriers du Botan (2) descend de l'Alpe ! »
D'autres, enfin: « Ce sont les moufflons mâles qui luttent à coups de cornes sur le Sîpanê Khalaté ! » (3)
[.En réalité ], j'étais couchée sur le côté droit,
Je m'étais retournée sur le côté gauche,
Mes colliers et mes pendantifs d'ambre retentissaient,
Sur ma poitrine blanche et brune.

(4)

LE JEUNE HOMME.
Gloire à toi, Créateur,
J'étais là, lorsque l'on édifia les fondations de Burdjà Balak (4),
Le maître maçon construisait, les apprentis montaient les pierres.
Maître maçon, je veux que tu fasses un palais pour moi et pour le joli monde.
Nous te fournirons de la maison le sucre candi,
De notre haleine, rose et basilic.
Jeune fille et canard, du lac couvert de mousse.

(5)

Nul n'a vu poisson mourir de soif en pleine mer.(5).
Maître, je veux que tu façonnes pour l'amie une fleur d'or(6).
Sans la poser sur l'enclume,
Sans la frapper du marteau,
Sans la tordre avec les pinces:
Saisis-la avec d'extremes précautions,
Modèle-la avec les cils de tes yeux,
Pour que le joli monde la mette à son nez busqué,
Les jours de fête et de noce, sans gâter la fossette aux baisers.

(1) Memé Chevan est un saint, protecteur des troupeaux. Il est particulièrement vénéré par les Yezidis.

(2) C'est à dire, des guerriers terribles. Les Botaniens ont la réputation de tout faire avec excès, et l'épithéte de « botani » implique souvent une nuance d'exagération.

(3) Montagne prés du lac de Van.

(4) Le palais des émirs de Botan, à Djeziré, est célébre dans tout le Kurdistan pour avoir servi de cadre aux amours de Mem et de Zin., le Tristan et l'Ysolde kurdes.

(5) Allusion au trouble-féte dont il est question dans le 2e. strophe.

(6) Bijou que les femmes portent à la narine gauche.

# Kitêbxana Hawarê

Hejmar:

1 — Rêzana Elfabiya Kurdî C. A. Bedir-Xan.
2 — Rupelnine Elfabê C. A. Bedir-Xan.
3 — Dilê Kurên Min Dr. K. A. Bedir-Xan.
4 — Bîyişa Pêxember. Bi Kurdiya dumilî, bi dîbaca C. A. Bedir-Xan
5 — Nivêjên Êzediyan bi dibaca C. A. Bedir-Xan
6 — Mektûb ji Mistefa Kemal paşê re
7 C. A. Bedir-Xan
1 — Mesela Kurdistanê Bazîl Nikîtîn
8 — Ji mesela Kurdistanê C. A. Bedir-Xan
9 — Elfabeya Kurdî Dr. K. A. Bedir-Xan
10— Xwendina Kurdî Dr. K. A. Bedir-Xan
11— Elfabeya min Dr. K. A. Bedir-Xan
12— Dersên Şerîetê Dr. K. A. Bedir-Xan
13— Çarînên Xeyam Dr. K. A. Bedir-Xan
14— Proverbes Kurdes. Medhelokên Kurdî Lucy Paule Margueritte û Emîr. K. A. Bedir-Xan Paris - 1937
15— Le roi du Kurdistan. Qralê Kurdistanê. Emir K. A. Bedir-Xan û Adolphe de Falgerolle. Paris - 1937
6— Der Adler von Kurdistan. Eyloyê Kurdistanê. Prinz K. A Bedir-Xan û Herbert Örtel Berlîn - 1937
17— Der Schnee Des Lichtes. Berfa Ronahiyê Şihrên Kurdî Prinz. K. A. Bedir-Xan û Dr. Curt Wunderlich Berlîn - 1937

# Kiryariya Hawarê

| | | | |
|---|---|---|---|
| Salî | 500 | Qirûşên | Sûrî |
| Şeşmehî | 300 | Qirûşên | Sûrî |
| Sêmehî | 200 | Qirûşên | Sûrî |

Xwedî û gerînendeyê berpirsiyar: Mîr Celadet Alî Bedir-Xan. Şam—Sûriye
Directeur Propriétaire: Emir Djéladet Aali Bedir-Khan. Damas—Syrie

SAL 9
HEJMAR 32

DUŞEMB
1 ÎLON 1941

# HAWAR

ANNEE 9
NUMERO 32

LUNDI
1 SEPTEMBRE 1941

## KOVARA KURDÎ ✶ REVUE KURDE

TÈXISTIYÈN VÈ HEJMARÈ



ŞAM—1941
ÇAPXANA SEBATÊ

SAL 9
HEJMAR 32

DUŞEMB
1 ÎLON 1941

# HAWAR

ANNEE 9
NUMERO 32

LUNDI
1 SEPTEMBRE 1941

KOVARA KURDÎ ✶ REVUE KURDE

## TEFSÎRA QURANÊ

140 - An gotina we ew e ko Ibrahîm Ismaîl, Isheq, Yaqûb û êlên di wan Cuhî an file bûn ? Pêxemberê min .. bêje wan : Ma hon çêtir dizanin an Xwedê ? Ma ji yê ko hiceta Xwedê li nik wî ye û ew wê vedişêre, jê zalimtir kî ye ? Xwedê hay ji emelên di wan heye.

141 - Ew milet derbas bû çû, keda wan ji wan re ye û keda we ji we re ye. Pirsa emelê wan ji we naye xwestin.

142 - Ji nav mirovan yên ko sefîh in dibêjin: Çi li wan qewimiye ko qibla xwe guhartin[1] Pêxemberê min, bêje wan: Xudanê rojhelat û rojava Xwedê ye, ew ji kerema xwe riya rastiyê ji kîjkî re dixwaze dide.

143 - Herwekî me Ibrahîm û çêliyên di wî bijartî bû, wiha jî me hon weke miletekî giran û delal ji xwe re neqand: heta ko hon bi rastiya pêxember û kitêbên Xwedê şehdetiyê bînin û pêxemberê min jî, bi qenciya we şehdetiyê bîne. Gava me Beyta Miqedes, kiri bû qiblegeha we, me dixwest em bizanin kî ji we, li pey pêxember e û kî xwe jê dide paş. Bi emrê Xwedê, guhartina Qiblê ji bona bawermendan ne tiştekî giran e. Xwedê sewaba nimêja we ya ko we ber bi aliyê Beyta Miqedes ve, kiri bû, winda nake, ji ber ko Xuda bi evdên xwe re dilnerm û mihrivan e.

144 - Me dît ko te çavê xwe li ezmên digerand û jê dipirsî. Emê berê te bidin qiblekê ko tu pê dilxweş bibî. Rûyê xwe bide ber bi aliyê Mizgefta Miqedes ve û hon li kû derê bin rûyê xwe her bidin ber bi aliyê wê ve. Heçî ko xudan Kitêb in dizanin ko ew guhartina Qiblê bi emrê Xuda ye, heq e. Xwedê ji emelên evdên xwe ne bêhay e.

145 - Heke te hemî delîlên xwe şanî xudankitêban bidî jî, dîsa ew rûyên xwe na dine Qibla te, tu jî rûyê xwe na dî Qibla wan û hinên ji wan rûyên xwe nadine qibleyên hinan. Ji vir vê da ko ji kerema Xwedê zanîna rastiya Qiblê giha te heke te bi ya Cuhî û Filehan kir û rûyê xwe da Qibla wan, dibî ji zaliman.

146 - Yên ko me kitêb daye wan, ew herwekî kurên xwe nas dikin, wisa jî ew Cenabê Pêxember nas dikin, bi hatina wî ji kitêben xwe seh kirine; lê birek ji wan rastiyê vedişêrin û pê dizanin.

147 - Herçî ko ji nik Xuda ye û emrê wî ye, rast e, Pêxemberê min. Gelî bawermendino, bila şik ne keve dilê we.

148 - Ji bo her miletekî Qibleyek heye ko ew berê xwe ber bi wê ve dide. Gelî mislimanino, rûyên xwe bidin kabê û dest bi ibadetê û emelên qenc bikin û di kirina ibadet û qenciyê de ser ji hev bistînin; hon li kû derê jî bin, di roja pişdawiyê de Xwedê we dê biçivîne û bêxe bin destê xwe. Xuda bi her tiştî dikare.

149 - Tu ji kîjan alî jî bi rê kevî di dema nimêjê de berê xwe ber bi Kabê ve bide. Ev emr û fermana Xuda ye. Xwedê ji emelên we ne bêhay e.

[1] Gava cenabê pêxember bedela Beyta Miqedes di Qudsê de Kabe kir qiblegeha misilmanan, cihiyan wisa got.

150 - Tu ji kîjan alî jî bi rê kevî, dema nimejê de berê xwe bide kabê. Hon li kû derê jî bibin berê xwe ber bi kabê ve bidin.

Da ko nerûdana we ber bi alî Kabê ve destê Cuhî û mişrikan de ne be hicet.

Ne ji kafir û zaliman lê ji min bitirsin, ta ko hon bigehin nîmeta min; û bikevin riya rastiyê.

151 - Me ji we re, ji we pêxemberek şand, heta ko ew ayetên me ji we re bixwîne û we ji kufr û nezaniyê xelas bike, we hînî kitêb û hikmetê bike û tiştine ko hon nizanin bi we bide zanin.

152 - Min bînin bîra xwe, heta ko ez jî we bînim bîra xwe. Şikra xwe bi min bînin û serhişkiyê mekin, û ji kufrê xwe bidin paş.

153 - Gelî bawermendino! Di tengasiyê de bi nimêjkirinê û girtina rojiyê û bi sebrê ji min hêvîdar bibin. Xudansebr digehin qenciya Xwedê, Xuda bi wan re ye.

154 - Ji mirovan re, yên ko xwe li ber Xwedê didin kuştin, mebêjin mirî, canfedayên Xuda, ne mirî ne, ew sax in, lê hon tê nagehin.

155 - Emê we bi tirsê, bi birçîtiyê, bi belengaziyê û bi mirandina zaroyên we biceribînin. Pêxemberê min .... Heçî xudansebr in, ji wan re mizgîniya kerema min bigehîne.

156 -Yên belaketi ko dibêjin: Em evd û xulamên Xuda ne; em ketine bextê wî û emê vegerin ba wî; ji wan re jî mizgîniya kerem û comerdiya min bigehîne.

157 - Kerem û qenciya Xuda û piyariya wî bi wan re ye û ew gihane riya Xuda.

158 - Sefa û Merwe jî li ba Xwedê qedirgiran in, yê ko mala Xwedê tewaf an ziyaret dike; jê re tu guneh nîne heke ewî Sefa û Merwe jî tewaf kir. Yê ko qenciyê dike û jê hêj zêdetir, xweşhal dibe; Xwedê halê şikirdaran dizane,

159 - Herçend jî me bi Tewratê pêş wan kiriye, yên ko dîsa bi hicet û delîlên pêxemberîtiya Cenabê Mihemed mikur nayin ew lanetketiyên Xuda ne û laneta her kesî jî li wan e.

160 - Lê heçî ji wan, ko poşman bûne û dest ji veşartina rastiyê kişandine, û bi delîl û hicetên pêxemberîtiya Cenabê Mihemed mikur hatine û tobedar bûne nefsa xwe islah kirine; ez toba wan qebûl dikim û di gunehên wan dibihurim.

161 - Lê yên ko kufir kirine û bê tobe mirine ew kafir in, laneta Xuda û melaîketan û hemî xelkê li wan e.

162 - Ew di vê lanetê de her dê bimînin û ji wan re bext naye dayîn.

163 - Xudayê we yek e, jî wî pê ve tu Xwedê nîne, ê dilovan û piyar ew e.

164 - Afirandina erd û ezmanan, pey hev hatina roj û şevê û kin û dirêjbûna wan, ji bona karê mirovan, çûn û hatina gemiyan ser avê, daketina baranê ji ezmên bi ya ko erdê hişk û mirî bi vê vedije, têrbûna rûyê erdê bi her texlît heywanan, hatina bayan ji her aliyên dinê, çûn û hatina ewran di navbera erd û ezmanan de; ev tişt hemî bi emr û fermana Xwedê û bi kerema wî çêdibin û di qewimandina wan de ji bo miletekî bîrewer hezar hikmet hene.

165 - Lê hin hene radibin, xaçên xwe dikin hempayê Xwedê û bi qasî ko mirov divê ji Xuda hez bike, ew ewçend hejî pûtên xwe dikin.

Lê bêşik hejkirina mirovên bawermend ji Xudayê xwe, ji hevîna wan mişrikan, hêj xurtir e û mirovên bawermend dev ji Xudayê xwe bernadin.

Heke pûtparêz bi giraniya êş û cezayê ko ew di roja pişdawiyê de wê bibînin bizaniyana xurtî, qudret û mezinahiya Xwedê seh dikirin û tê digehiştin. Qudreta Xwedê mezin e; girtin û berdan di destê wî de ne. Xwedê bi awakî giran diêşîne û diezibîne.

166 - Dema ko mezinê wan kafiran ezabê Xwedê bi çavên xwe dibînin û xwe ji bindestiyên xwe dûr têxin û di navbera wan de tu bext û hevalîtî namîne.

---

Ji bona Tefsîra Qiranê k. k. û li hejmarên 27, 28, 29, 30 û 31ê fedkirin.

# HEDÎSÊN

## CENABÊ PÊXEMBER

249 - Gava hon ji min re qasidekî dişînin mirovekî bişînin ko nav û rûyê wî spehî ye.

250 -Ko xadima we ji we re xwarina we anî, bînin bîra xwe ko wê bi hilm û bihna wê xwarinê dilê xwe xurt û şa kiriye, berdin bila ew jî bi we re bixwe an jê çend pariyan bidine wê.

251 - Gava yekî xanedan û malvekirî tê nik we qedrê wi bigirin.

252 - Gava Xwedê qenciya yekî dixwaze, cihê wî bilind dike û wî dike arikarê xelkê.

253 - Heke hon dixwazin qedrê yekî li cem Xwedê çi ye bizanin çav bidêrin û binêrin gelo xelk di heqê wî de çi dibêjin.

254 - Ko te xirabiyek kir qenciyekê li pey wî bike; qencî xerabiyê dişo.

255 - Ko du misilman pev çûn û yekî ê din kuşt her du jî dikevin dojehê.

256 - Gava du misilman rastî hev tên divê silavan li hev bikin, li halê hev bipirsin, pesnê Xwedê bidin; ko wan ew kirin Xwedê di gunehên wan dibore.

257 - Tiştê ne bi dilê te be meke.

258 - Gava mirovek tişteki dibêje û li dora xwe dinêre, yê ko dibihise divê bizane ko ew gotina he emanet e, ji tu kesî re naye gotin.

259 - Ko Xwedê kar an xebatek da we heta ko ew xwe bi xwe ji destê we ne çû dev jê bermedin. « mirov divê di xebata xwe de pê bide erdê û tê de pêş ve here»

260 - Heke tu bi kirina xwe a qenc şa û bi a kirêt şermisar dibi bawermend i, mirovekî pak û paqij î.

261 - Heke hon dibihisin ko mirovek dibêje xelk hemî bêfesal in; bizanin ko yê bêfesal ew bi xwe ye.

262 - Xelkê dora te, di heqê te de herwekî dibêjin tu wiha yi.

263 - Heke we bihîst ko çiyayek ji cihê xwe rabûye bawer bikin; lê heke dibihîsin ko mirovek eslê xwe guhartiye bawer me kin.

264 - We bihîst ko, di welatekî de êşek heye me rin wî welatî û cihê ko hon tê de ne êşek lê peyda bû jê dermekevin.

265 - Heke misilmanekî li misilmankî şûr kişand heta ko ew şûr bikeve kalanê xwe Xwedê lanet li xwediyê şûrkişandinê dike.

266 - Ko te gunehek kir li pey wî xêrekê bike ta ko xwedê pê gunehê te hiline. ( xêr gunehan winda dike ).

267 - Gava hon dienirin heke hon ji piya ne rûnin, heke rûniştî ne vekevin.

268 - Ko misilman li hev ketin ji bona lihevanîna wan bixebitin; heke hon pê nikarin tu caran hevalkariya zaliman me kin.

269 - Ko camêrên we bûne mezinên we û comerdên we dewlemendên we û hon jî işê xwe bi şêwiran dimeşînin jiyîn ji mirinê çêtir e; lê heke awanên we dibin serekên we û çavtengên we dewlemendên we û işê we dikeve destê pîrekan, mirin ji jiyinê baştir e.

270 - Ko îş ket destê peyayên bêkêr divê mirov hêvîdarê qiyametê bibe.

271 - Qenciya miriyan bêjin, kêmaniya wan me bêjin.

272 - Ez wisa dibînim ko ji mirina min bi şûn de hon mizgeftên xwe mîna kenîşteyên cihiyan û dêrên filan bixemilînin, jê bigerin.

273 - Ji dan û standina faizê mezinitr guneh ew e ko mirov paşgotiniya jin û mêrên bi namûs bike; bi xirabiyê qala xelkê me kin.

274 - Xwedê li wan tête ẍezebê, yê ko kirin û firotina xwe de sond dixwin ; belengaz in û pozbilindiyê dikin , pîr bûne û zinayê dikin, wexta hikmê xwe de zilmê dikin.

275 - Timakarê dinyayê me be da ko Xwedê heji te bike , çavê xwe bera malê xelkê me de, ta ko xelk ji te hez bikin.

276 - Ji Xwedê fêdî bikin û ji bona tu tiştî destê xwe li ber mezin û dewlemendan vemekin.

277 - Beriya mirinê , hisabê mirina xwe bikin , kirin û gotina we her çak û rast be,

278 - Ji bona işekî biçûk jî hevalkariya xelkê me xwazin ,

279 - Hinde ji destê te tê tu xwe çêtir bike.

280 - Her ji wicdana xwe bipirse, ewê rastiyê rê te bide , miftî pê qail ne be jî, ne tu xem e.

281 - Girtiyan me êşînin, bi wan re qenc bin.

282 - Di sûçên xelkê biborin ta ko xelk û Xwedê di sûçên we biborin.

283 - Bindestiya mezinê xwe bikin, heke serê mezinê we hinga mewîjekî piçûk be jî.

284 - Xwedîmal Xwedê ye, yê ko bawer bike xwedî mal ew bixwe ye , Xwedê ẍezeba xwe lê dike.

285 - Heçî li dinyayê xurtî û çawsorî lixelkê kirine û ew êşandine di axiretê de zefh wê bêne êşandin.

# KARDÛX

## Û WELATÊ KARDÛXAN

### AN KURD Û KURDISTAN DI WEXTÊ YEWNANISTANA KEVIN DE

Piştî mirina Daryûşê diwin kurê wi ê mezin Erdeşir li ser textê Ecemistanê rûnişt. Birayê wî ê kiçik Korûş, kurê Perizadê, dilê xwe lê xira kiri bû. Erdeşir pê hesiya, brayê xwe da girtin û kir ko wî bikuje. Lê Korûş, bi mehdervaniya diya xwe, canê xwe xelas kir. Erdeşir di brayê xwe bori, ew bi xatirê Perîzadê da lê li cem xw ne hişt. Erdeşir Korûş kire waliyê Enedolê û ew ji cem xwe bi dûr xist.

Korûş li Enedolê jî rahet ne disekinî. Agirê seltenetê di dilê wi de venemirî bû. Ji ker ve xwe kar dikir. Esker dida hev. Ji Yewnanistanê zabit û kumandar tanîn. Ji yewnanan di bin fermandariya Klêarx de ji deh hezarî bêtir peya gihandi bûn hev.

Korûş piştî ko karê xwe kir; bi ordiweke mezin ajot ser brayê xwe. Erdeşir pê hesiya bû û ewî ji xwe kar kiri bû. Di cihê ko îro jê re Xana Iskenderiyê dibêjin her du biran li hev xist. Eskerê Korûs zora dijminê xwe biri bû, lê ji ber ko Korûş di şer de hati bû kuştin, eskerên wî ên mizefer belav bûn û ji hev de ketin.

Ji eceman hinek derbasî aliyê din bûn; hinên din revîn û yewnan bi serê xwe man.

Eceman Klêarx û kumandarên din ezimandîn taştiyekê û bi bilekê ew kuştin. Ordiwa yewnanan di welatekî xerib de bêserî ma bû Şahê ecem dijminê wan, hevalbendên wan ên kevin li wan qulipî bûn. Ne dizanîn wê çi bikin.

Hin zabit û eqilmend gihane hev û şêwrek danîn. Di ordiwê de miroveki hêja hebû, bi navê Ksênefon.

Ksênefon xorteki hêja û xwenda û mêreki qenc bû. Di şêwrê de herkes bi hêjabûna wî hesiya bû. Hevalên wî rabûn ew ji xwe re fermandar bijartin.

Ksênefon di heqê vê seferê de kitêbek, bi navê « Enêvesis » nivîsandiye. Di vê kitêbê de Ksênefon biserbatiya wi leşkerî û sefera ecem dûr û dirêj qise dike.

Yewnanan dikir ko vegerin welatê xwe. Diviya bû di Diclê re derbas bibin. Dicle rabû bû, pir lê nîn bûn; av jî bor ne dida. Eceman da bû pey û zor dida wan.

Yewnanan qerara xwe da: bindava xwe biguhêrînin, berê xwe bidin bakûr, ji welatê kardûxan derbas bibin û tê re xwe bigehînin behra reş.

Welatê kardûxan welatê me ye. Hingê ji kurdan re kardûx digotin. Gava em hingê dibêjin, divêt bête zanîn ko ev hingê ji me geleki dûr e. Beriya Îsa pêxember bi çarsed salî. Ji hingê heta îro li me kurdan 2380 sal borîne. Lê em di cihê xwe de ne. Me ber bi bakur ajotiye; lê me xwe ji cihê wwe ê kevin ne daye paş.

Ksênefon di kitêba xwe de bi « ez » ê naştexile. Xwe wek miroveki din dihesibîne û çîroka xwe welê gilî dike. Ji lewre gelek caran navê wî ji devê wî tête bihîstin. Êdî guhdariya Ksênefon bikin:

«Eskerê Ksênefon xwe gihandi bû bilindcihan û raserî dijminan bû bû.

Eceman xwe dida paş û diketin rêke din. Xrîsof — kumandareki yewnanî — bi eskerê xwe ve daketi bû deştê, eskerê xwe li gundên têrzad û zexîre bi cih dikir.

Piştî nivro dijmin ji nişkekê ve daket deştê û li me der bû. Kardûxan yewnanên ko ji ordiwê dûr keti bûn û da bûn pey talên kuştin. Li hire me gelek pez, ji pezên ko şivanan dikir li avê derbas bikin, standin.

Eceman gava dit ko em zadê xwe ji gundan dibin, rabûn agir berdan gundan. Ksênefon digot em herin arikariya gundiyan û nebêlin ko gundên wan bişewitînin.

Lê Xerîsof ne di vê fikrê de bû. Yewnan gotina Xrîsof di ser gotina Ksênefon re girt û wan jî dest bi şewitandina gundên kardûxan kir.

Lê ji ber ko yewnanan nikari bû di Diclê re derbas bibin berê xwe dan çiyayên welatê kardûxan [1]

Tevdîra me ev bû ko em ji ker ve ji deştê rabin û beriya dijmin xwe bigehînin bilindcihan. Ji xwe ji şevê koteki ew zeman ma bû ko em bêi ko bêne ditin ji deştê derbas bibin. Me emrî barkirinê da û bi spêdê ve em gihane çiyê.

Xrîsof digel firqe û segmanên xwe ên sivik keti bû pêşiyê. Ksênefon di dimdarê de ma bû û pê re tu segmanên sivik nîn bûn, Eskerên wî tev de piyadeyên giran bûn. Ji ber ko yewnanan mihtemel ne didit ko ecem bidin çiyê, ji par re li wan vegerin, bidin pey û li wan xin.

Xrîsof, beriya ko kardûx pê bihesin, digel eskerê xwe giha bû pehnava çiyê. Ordiwê

[1] Bi texmîn deşta ko yewnan tê de ne, ew deşt deşta Silopî ye û milê din deşta Hesînane û Diclê di ber wan re diherike. Ji hir wê bidin çiyayên Botan.

dida pey. Bi vi awayi em gihane gundên ko di newal û di gêran de bûn.

Kardûx, gava bi me hesiyan; ji gundên xwe rabûn û digel jin û zarowên xwe berê xwe dan çiyan.

Di gundên kardûxan de me gelek zad û zexîre dîtin. Xaniyên kardûxan bi kiloz û dizikên tinc û sifir xemilandî bûn. Yewnanan dest ne dane wan, û ne ketin pey kardûxên ko direvîn. Ji ber ko me di dilê xwe de digot heke me bi wan xweş kir, heye ko em ji welatê wan bê teq û req û bi awakî dostane derbas bibin. Ji xwe kardûx bi xwe neyarê şahê Ecem bûn.

Lê yewnanan herçî zad û zexîre ne, tev de dibirin; ji ber bêgaviyê.

Kardûxan guh ne da xweşkirina yewnanan û tu rûyê dostî û aşiyê şanî wan ne dan.

Dimdar heta bi tariyê di cihê xwe de ma; û bi şev dakete gundan. Ji ber ko rê gelek teng bû, bi hewa ketin û dahatin rojekê ajoti bû.

Hinek ji kardûxan giha bûn hev û ajoti bûn ser yewnanên ko ji par re ma bûn. Kardûxan ew bi tîr û kevan û kevir kuştin, hinek ji birîndar kirin. Ji xêra xwedê re yewnanên ko ji par re ma bûn hindik bûn. An ne birekî ordiwê î mezin bihata şerjêkirin.

Bi şev em di gundan de man. Kardûxan li ser çiyan agir dada bû. Me guhdariya hev dikir.

Bi şefeqê ve herçî zabit û kumandar, gihane hev û qerar dan ko barxana ordiwê sivik bikin û hêsîrên ko vê paşiyê hati bûn girtin, berdin. Ji ber ko qelebalixa hêsîr û dewaran em aciz dikirin. Eskerên ko li wan miqate dibûn nikari bûn şer bikin. Hêsiran nanê me jî dixwar. Li ser vê qerarê ji dewarên baş heçî ko ji me re diviya bû me ew ji xwe re bijartin û ên mayîn berdan.

Piştî taştiyê ordû bi rê ket. Rojê pê de em meşiyan. Me carina şer dikir, carina jî me bihna xwe dida.

Sibetirê bapûkek li me qelibî. Digel vê hindê diviya bû em bi rê ve berin; ji ber ko zadê me ne ma bû.

Xrîsof da bû pêşiyê, Ksênefon di dimdarê de ma bû.

Kardûxan derbeke xurt li me da. Kardûxan nîzingî li me dikir û kevir û hesin li me dibarandin. Yewnanan dida pey û ji par re dikişiyan Bi vî awayî em ji rêveçûnê diketin. Gava dijmin li me dişidand Ksênefon eskerên xwe disekinand û şargeh dikir. Me elam dida Xrîsof; wî ji eskerên xwe disekinand. Lê carekê Xrîsof li şûna ko bisekine, xwe wer lezand ko ji adetê der ji me bi dûr ket. Bivê nevê tiştek li wan qewimî bû. Lê Ksênefon nikari bû here pêşiyê û seh bike. Dimdar jî bêgav ma û lez da xwe. Bi awakî welê ko meşa me bû bez û rev.

Di vê navê de segmanekî hêja, Klêonîm, hate kuştin. Tîrek li kêleka wî keti bû. Tîrê mirtal û kirasê wî î çerm qul kir û ji par re avêti bû. Segmanekî din, yekî bijarte, bi navê Basyas jî hati bû kuştin. Tîrek di serê wî re çû bû.

Gava em gehiştin cihê ko em lê bimana Ksênefon bi lez çû cem Xrîsof û gazind jê kirin. Ksênefon gote wî ko bi vê lez andinê dimdar mecbûr bû bû hem bi rê ve here hem şer bike. Dîsan ji ber vê lezandinê yewnanan cendekên du peyayên hêja jî li erdê hişti bûn, bêî ko bikarin wan veşêrin.

Xrîsof lê vegerand û got: Tu van çiyayên asê dibînî? [1] Mirov di ser destê wan re nikare here. Divêt em xwe li wan biqelibînin. Tu vê riyê dibînî, jû pê ve tu rê nîne ko em tê re bikarin derbas bibin û ji vê derê xelas bibin. Ev jî, rêke zehf asê û nexweş e. Ji ber vê yekê min xwe lezand û ez li hêviya te ne mam. Min xwe ne lezanda hebû ko dijmin beriya me biketa bilindcihan û rê li me bigirta. Rêberên me bi xwe dibêjin ko ji vê pê ve tu rê nînin.

Ksênefon gote Xrîsof:

— Bi min re du hêsîr hene. Her du ji xelkê vê derê ne, em carekê ji wan jî bipirsin.

Hêsir anin û ew ji hev dûr xistin û ji ê pêşîn pirsîn heke rêke din nas dike. Kirin ne kirin wî hêsîrî ji « no » pê ve tu tişt ne got. Rabûn ew, ji pêş çavên hevalê wî ve şerjêkirin. Hevalê wî anîn û jê pirsîn. Ewî got:

— Hevalê min ji we re got ko rêke din nas nake, ji ber ko di van gundan de keçeke wî bi mêr e. An ne rêne din hene.

Evî kardûxî soz da yewnanan ko wan di rêke qenc re biborîne. Rêke welê ko dewar jî tê re bi rahetî bikarin derbas bibin. Ji gotinên rêber dixuya ko di pêşiya wan de

[1] Wer dixuye ko yewnan ketî bûn dora Cûdî û Herekolê û diviya bû di ber û di ser wan re biborin. Li bire û bi hênceta Herekolê tiştek têtе birê. Gelo navê Herekolê ji kû haliye? Herekol çiyakî bilind û biheybet e. Di Yewnanistana kevin de qehremanek wek Rîstemê Kurd hebû; jê re digotin «Hêrkûl». Heye ko gava yewnanan ev çiya dît ji xwe re gotine «wek Hêrkûl e» û ev nav lê maye û di devên kardûx û kurdmanean de bûye Herekol.

girek heye û heke kardûx bi wan hesiyan û beriya wan ketine gir yewnan wê hew bikarin di ber re derbas bibin.

Şêwrek danîn. Herçi zabit û kumandar û segmanên bijarte, gihane hev. Diviya bû birek esker here pêşiyê û beriya dijmin bikeve wi giri û rê bihemine. Ji bo vi kari du hezar canfeda hatine bijartin.

Roj diçû ava. Canfedan emrê xwe girti bû. Pişti şivê wê bi rê ketan. Me rêberê girêdayî ji sparte wan.

Wezîfa canfedan ev bû: Ewê bi şev biketan gir û heta spêdê, wê tê de biman. Bi şefeqê ve, bi dengê stirihan, wê işaret bidana ordiwê û drêji dijminê ko riya mezin girti bû, bikirana. Hingê tevayiya ordiwê xwe bigihanda wan.

Baraneke hûr dibarî. Ji bo veşartina hereketa canfedan û xapandina dijmin, Ksênefon digel eskerên dimdarê li ber riya mezin şargeh bû bû. Newalek diket neqeba me û çiyê. Diviya bû em tê re derbas bibin û bi hewa kevin. Kardûxan ji jor de kevirine gir û hûr li me gêr dikirin; kevirine girover. Di nav wan keviran de hin hebûn dibûn barê erebekê.

Ev kevir gava gêr dibûn li tehtan diketin, dipengizin, dişeqitîn, dişikestin û wek kevirên kuçkaniyê, di hewayê re, bi fikîneke tij, difirin. Di bin barana van keviran de me nikari bû em nizingî li rê bikin. Em li rêke din digeriyan; ew ji bi dest ne diket. Heta bi şevê halê me û kardûxan bi vi kari bû.

Li me bû şev. Em ji şargehên xwe rabûn; me xwe da paş û me şiv xwar. Ji xwe eskerên dimdarê taştê ji ne xwari bûn. Kardûxan bi şev ji dev ji me barneda; kuç û kevir li me gêr dikirin. Me pêjna wan dikir.

Canfedayên me bi rêberê xwe ve derbasî çiyê bû bûn. Ji nişkekê ve bi ser qerekona dijmin de girtin. Kardûxan agir dada bû û di dora wî de rûniştî bûn. Bi hatina yewnanan ne hesiya bûn. Yewnanan hinek ji wan kuştin, hinên din ji, ji hevrazan de gêr kirin û ketin şûna wan.

Canfedan di dilê xwe de digot qey bû bûn raserî dijmin û ji ordiwê re rêke baş temîn kiri bûn.

Lê ew şaş bûn. Di paş wan re kelhoşkek hebû û rê di ber wî re derbs dibû. Kardûxan mifrizekî mezin êxisti bûn kelhoşkî û rê birî bûn. Digel vê hindê di neqeba girê ko keti bû destên yewnanan û wî kelhoşkî de riyek hebû. Kardûx bi şev di gir de beyitin û bi sibehê ve bê deng û pêjin dane rê. Mijê girti bû ser erdê. Kardûx û yewnan ji hev ne dixuyan. Yewnanan nizingî li kardûxan kir û dema ko bi darî hev ketin, borîzanan li boriyên xwe xist û yewnanan bi zirt û fortan dirêjî kardûxan kir. Kardûxan xwe ne girt; ji cihê xwe rabûn û revîn. Ji ber ko gelek çist û çalak bûn kardûxan xwe bi lingên xwe xelas dikir û kêm dihatine kuştin.

Xrîsof gava dengê borîzanan kir bi eskerên xwe ve û di riya mezin re ajote pêş. Kumandarên din dane rê û şivereyên ko diketin pêşiya wan. Herkesî bi awakî qesta çiyê dikir û hildikişiya ser. Hinekan rimên xwe paş xwe ve drêj dikir û hevalê xwe kaş dikir.

Riya ko rêber şanî me da bû ji bo dewar û barxanê ji hemî riyên din çêtir bû. Ksênefon bi esker û barxanê ve, tê ve diçû. Li ser vê riyê mitikek hebû; û dijmin keti bû ê. Lê Ksênefon nikari bû riya xwe biguhêrîne. Ji ber ko dewar û barxane nikari bûn di rêke dî ve herin. Yewnanan halan di hev hildan û êrîş kirin. Lê li mitik wer ne hatin û cihekî revê ji dijminê xwe re hiştin. Kardûxan ji dest ne birine xwe, ji mitik rabûn û xwe dane paş. Eskerên me tev da di ber gir re derbas bûn. Lê girekî din diket pêşiya me û tê de ji dijmin hebû: Yewnanan dil kir wî girî ji mîna girê pêşin bi êrişekê bibin û riya xwe vekin.

Ksênefon pê qaîl ne bû. Ji ber ko esker tev da drêjî wî girî bikira hebû ko kardûx vegerin girê ko dihî lê bûn û ji par re li barxanê xin. Ji xwe ji ber tengiya rê dewar yeko yêko da bûn pey hev û barxane bû bû karwanekî dûdirêj.

Ksênefon di bin fermandariya sê zabitên hêja Sefîsodor, Emfikrat û Erxegoras de, birek esker di girê pêşin de hişt û bi eskerê mayîn ve drêjî girê din kir û ket ê. Di pêşiya gir de kelhoşkekî asê hebû û kardûx tê de şargeh bû bûn. Ksênefon nizingî lê kir. Kardûxan bêî ko dest bibin xwe kelhoşk helîştin û baz dan. Yewnanan lê ecêbwayî man û di dilê xwe de gotin qey çavên dijminên xwe şkênandine û kardûx yekcar ji deşthilanîne ketine. Yewnan şaş bûn, dixapiyan. Çavên kardûxan ne şkiya bûn. Kardûxan tiştê ko di dimdarê de çêbû bû tev de dîti bûn; xwe ji kelhoşkî da bûn paş û dikirin ko li girê pêşin bêne wer û li dimdarê xin.

Ksênefon digel eskerên xwe ên ciwantir hilkişya bû ser kelhoşkî û talûke bi çavên xwe dîti bû. Ksênefon emrî eskerê xwe kir

ko hêdî hêdî bimeşin da ko ên bişûndemayî bikarin xwe bigihînin wan û gava li hev civiyan diviya bû esker tev de xwe bidin erdekî rast û bikevin qora şer.

Ksênefon hêj emrê xwe ne qedandi bû ko Erxegoras, ji nişkekê ve lê der bû û got ko kardûxan bi êrisekê ew ji gir rakiri bûn; Sefîsodor, Emfîkrat û heçi ko nikari bûn xwe ji zinaran de çeng bikin, hati bûn kuştin.

Kardûxan piştî ko zora yewnanên girê pêşin birin; pey hev gir û mitikên din jî rakirin û ketin pêşiya kelhoşkê ko Ksênefon bi xwe lê bû.

Ksênefon bi wasta dîlbendekî (tercimanekî) deng li kardûxan kir û mitarekêk ji wan xwest da ko yewnan bikarin kuştiyên wxe veşêrin. Kardûxan pêşnihada yewnanan qebûl kir; bi şertê ko yewnan nema gundên kardûxan bişewitînin. Ksênefon jî ev şert qebûl kir.

Dema ev mizakere, yanî mizakera çekdaniyê çêdibû û dawiya ordiwa yewnanan hêj dikişiya û dibate pêş, kardûxên ko ji kumbir û kelhoşkên dorê dihatin der, li hev diciviyan. Yewnan jî xwe digihandin hevalên xwe, yên ko çekên xwe danî bûn.

Ji nişkekê ve kardûxan da ber qîran. û bi heyteholê hilkişiyane kelehoşkê ko Ksênefon hêj jê daneketi bû; û ji nû ve kevir li ser yewnanan gêr kirin.

Peyayê ko mirtalê Ksênefon hildigirt jê bi dûr keti bû. Segmanekî, bi navê Êrlok, baz da û mirtalê xwe li ber Ksênêfon girt Her diwan di ber talda mirtalekî de meşiyan û xwe gihandine ordîwê. Yewnan ji ber kadûxan kişiyan, gihane hev û ketin xaniyên têr zad û qwît. Di wan xaniyan de ewçend şerab hebû ko xwediyan şerabên xwe ber bîr û sarîncên çementokirî da bûn.

Me kuştiyên xwe bi rêberê xwe guhartin. Rêher çû cem xwediyan; kardûxan jî destûr da ko em miriyên xwe veşêrin.

Sibetirê, yewnan bê rêber û rêzan bi rê ketin. Kardûxan dida pey û li wan dixist, û carina jî beriya wan diketin geliyan û rê li wan digirtin.

Dema pêşdar disekinî, Ksênefon ji par re hildikişiya serê çiyan û bera dijminan dida; ew belav dikirin. Xrîsof, ji aliyê xwe ve, gava dijmin dirêj dikir xwe dida ber û rê ji dimdarê re vedikir. Bi vî awayî pêşdar û dimdar li ber dengên hev bûn û li hev miqate dibûn.

Wextê yewnan ji bilindcihên ko hilkişiya bûn ser, dadiketin jêr kardûxan ew gelek têşandin. Gava me dida pey wan jî me bi wan ne dikarî. Carina cihê xwe ne diterikandin, heta ko em hi temamî nîzingî wan dibûn. Bi tenê ji çar pênc gavan ji ber me radibûn. Lê kardûx hewqas çist û pêsivik bûn ko dîsan me ne dikarî em xwe bighînin wan û wan bigirin an bikujin.

Kardûxan ji tîrkevan û kuçkaniyê pê ve tu çekên din hilnedigirtin. Kardûx tirkevanîne serdeste bûn. Kevanên wan qederê du gaz û nîv dirêj û tîrên wan, ji gaz û nivekê dirêjtir bûn. Gava tîrkevanên xwe tavêtin xwe berdidan ser lingên xwe ên çepê, weris ber bi jêr û ber bi xwe ve dikişandin. Tîrên wan di zirih û mirtalên me re derbas dibûn. Tîrên kardûxan ko diketin destên yewnanan; zolek çerm bi serên wan ve girêdidan û wek yadigarekê, ew ji xwe re hiltanîn.

Di vî welatê çiyayîn de ji xelkê her derê bêtir xelkê Giritê bi kêr hatin.

Di roja heftan de em gehiştî bûn dawiya tixûbê welatê kardûxan û daketi bûn deştê. Me qerargeha xwe li ber ava mezin danî. Av ji çiyayên kardûxan ne gelekî dûr bû. Me di gundên deştê de gelek zad û zexîre peyda kirin.

Ji ber pirahiya zadê ko keti bû destên me û ji ber şahiya ko em ji destên kardûxan xelas bû bûn, ew roj ji me re bû bû rojeke cejn û şahînetê.

Em ji welatê kardûxan di heft rojan de derbas bû bûn. Di van heft rojan de bîstekê jî me çekên xwe danani bûn. Ezab û eziyeta ko me di van heft rojan de diti bûn, me ew ne di şerê şahê ecem ne jî piştî kuştina Korûş û di wextê perîşaniyê de ji ne dîti bûn. Bi xeyala ko ji wan ezeban xelas bû bûn; yewnanan di bin tîrêjên tavê ên germ de bihna xwe dida û kêf dikir.»

Çîrokiya Ksênefon, di heqê biserhatiya yewnanan, di welatê kardûxan de, li hire temam dibe. Gava mirov vê çîrokê dixwîne tiştek tête bîrê. Gelo di ordiwa ko di welatê me re derbas bû bû, çend peya hebûn. Divêt di wê ordiwê de, gava ew ordû ji şerê Şahê Ecem vedigeriya deh hezar peya hebiwan. Ji ber ko ji vê biserhatiya Ksênefon re vegera deh-hezaran jî dibêjin.

HEREKOL AZÎZAN

## MILETÊ BÊSERÎ

Kî ji we vê sernamê bixwine bê şik ewê bêje ko ev mêrik din bûye. Ma tu mirovên bi eqil di nav me da hene ko ez ji dîn nebim- Bi min heryek ji me bi hawakî dîn e. Eger em ji mileteki bi hiş û zana bûna halê me ev ne dibû.

Di dinê da tu jîndar hene ko kari bin bêseri bijîn? Belê.. belê henel Miletê kurd! Hon karin bibêjin mêşek, kelmêşek bê serî nabe! emê çawan bê serî bibin? Ma ez çi bikim bin ji hevalên me dibêjin ko divê em bê serî bin. Heke ji me serekek çêbe emê bi hev bikevin.

Ma wisa ye? na... na ne wisa ye. Bo me ji wek miletên din serekek (liderek) divê. Eşirên kurdan tucarn bêserî ne mane ko em kari bin bêjin divê miletê kurd ji bêseri be.

Eşirek kinga ko bêserî dimîne serek pir dibin, heryek ji wan dibêje ez im ko ez im. Ji lewre ev eşîr kêm dikeve, eşirên dorê lê xurtiyê dikin û eşîra bextereş ji bêserîtiyê tim belengaz û şermisar dimîne. Îro em ji bêseri ne, bê sergever û bê xweyî ne.

Ez ditirsim şermisarî û belengazî para me be! Zaf mixabin! ji piştgotinî pêve ji destê me tiştek dernayê. Heke em heqnas in, di nav me da ki bêtir hej ji miletê xwe dike, rast e, zana ye, xebatker e, kêrhatî ye em dê wî bikin serî, di dora wî da bicivin ko ew ji kari be bêje ez lîderê kurdan im.

Divê em parsûstûriyê nekin. Ji hev ra serê xwe dayinin û ji emrê serekê xwe ra itaetê bikin. Ji bona ko em kari bin vê keştiya ko em lê siwar in, bi selametî bigehînin benderê.

Heke wisa nebe, ji me hikûmetek ji çêbe divê dîsa bêserî be. Çima ko em ji hev didexisin, û nikarin em ji yekî ra bibêjin tu serekê me yî. Divê ji niha da em xwe bînî vî tiştî bikin ko sibe ranehêlin pêsîra bev.

Divê ew serek ji nefismeziniyê neke û ji qenciya welat pêştir tu armanc negire. Dilxwaza wî bi tenê xelasiya welêt be.

Ḥedîseke cenabê pêxember dibêje ko heke ji we sê mirov bi rê ve diçin bila yekî ji wan serekitîya ên mayîn bike. Jê tête zanîn ko sê mirov ji bêserî nabin. Em ko miletekî mezin in çawan bêserî dibin.

BEDRÎ CEMÎL PAŞA

## AGAHIYEK

Destpêka ilmê evînê pir bi me xweş bû mizac.
Bebr û movik yek bi yek qelbê me de girtî rewac.

Lewra dil perwaz nede ahên û fîxan nayê der.
Seyra işqê bê cefa dil nayê perhîz û mewac.

Ger nebî naxweş û bêzar şîn û girî çênebe.
Bijîşk nayê diyarî da bibexşîne ilac;

Lew bizane îşq û aşiq her li dinya serwer e.
Şerbeta pirsane peyda ew dike cama zecac.

Evîna paqij û hêja çêdibe werê nejad.
Yektiya qewman dijîne kev li siltan text û tac.

Çeng û tenbûr tev dinale dengê sazê zîz û jar,
Şêx û seyda ma çi zanin lezeta işqê amac.

Ger bixwînin, wer bibînin pend û nishê aşiqan,
Leşkerê cengê siwar bin, da ji Tûran bêne bac,

Hiş û zanin çêdike top û teyare nav û deng.
Leşkerê mêrxas ê camêr tîne xûgî sed xerac.

Em li ser keştê siwar in derya bextê me rewan,
Dê bi limanê gihin. Hişyaro zo ke tê ecac.

HIŞYAR,

## DERMANÊ NEZANIYÊ

Dinya êvar bû. Ez rastî miroveki hatim; miroveki sere. Bi min re da û stand û ji min pirsî;

— Pismam, çi dikeve serê te, gelo kurd ji wê bikarin, mîna miletên din bibin tiştek?

Min lê vegerand û got ê: Di canê Kurdistanê da êş pir in; û tu şik tê da nîne ko her êşek dermanek jê re divêt. Ji lewre canê Kurdistanê zehf dermanan dixwaze, da ko rihet û paşê xurt bibe. Ji her ko Kurdistan pir bi êş e, hewcedarî bijîşkeki jîr û jêhatî ye. Da ko ew bijîşk bikare vênexweşê darman bike.

Kurdino! ew bijîşk divêt rêbereki xurt, hişyar, cegerpola û desthesin be. Da ko bi xurtiya dest û dilê xwe bikare bê pêş û paş û bi zexmî her kêmasiyê ji nav miletê kurd hilîne.

Xeberbêjê min ji min pirsî û got:

— Bi te kijan êş berî hemiyan divêt bête derman kirin?

Min lê vegerand û got ê: Di canê miletê kurd de du kunêrên xedar hene; wan canê milet kotî kirin û gihan hestî; divêt ev her du kunêr bêne bi der kirin. Ev her dû kunêr, nezanî û berberî ne.

Dermanê nezaniyê zanîn, û dermanê berberiyê yekîtî ye.

SIBHIYÊ DIYARBEKRÎ

# BINGEHÊN GRAMÊRA KURDMANCÎ

BI NAVÊ YEZDANÊ PAK Ê DILOVAN Û MIHIRVAN

## — 6 —

## TEWANG

52 — Zimanê kurdmacî zimanekî tewangbar e. Yanî bêjeyên wi di qisetê de weke xwe namînin û li gora cihê ko di qisetê de dikevin ê, û wezîfa ko li ser xwe digirin têne tewandin û hin parkît bi wan ve dibin, an hin tîpên wan bi tîpine din diguhêrin.

53 — Ji birên qisetê bi tenê ên guhêrbar têne tewandin. Ên neguhêrbar tucaran nayine tewandin û ew hergav weke xwe dimînin

54 — Bi gelemperî bêje di qisetê de an kirar an bireser in. Gava ew kirar in weke xwe dimînin, û gava dibin bireser hingê têne tewandin.

Tewanga her birê qisetê herçend yekcar ji hev cida nebin jî ew kem û zêde ji hev biferq in. Tewanga her biri di cih û di devera wê de dê bête gotin.

55 — Tewanga navdêran: Navdêr, hevenav bin sernav bin, li gora mêjer û zayêndên xwe têne tewandin. Bi gelemperî û di yekejmariyê de navdêrên nêr bi « î » yê û navdêrên mê bi « ê » vê û gelejmara ber diwan bi « an » ê têne tewandin. Ev parkît bi paşiya navdêrân ve dibin.

Hesp hat. Hesp hatin.
Mehin hat. Mehîn hatin.

Di komekên jorîn de navdêrên « hesp » û « mehîn » ne hatine tewandin. Ji ber ko ew her du jî di wan komekan de kirar in û kirar nayine tewandin. Lê ev navdêr bi xwe di komekên jêrîn de hatine tewandin. Ji ber ko tê de êdi ne kirar lê bireser in.

Ez hespî dibînim. Ez hespan dibînim.
Ez mehînê dibînim. Ez mehînan dibînim.

Di mîsalên jorîn de navdêr hemî bireserê lêkerê ne. Lê navdêr bireserê navdêreke din jî dibin. Hingê jî navdêr têne tewandin. Herwekî: Ev goştê çêlekê ye. Ava golê şêrîn e. Di çiyayên Kirdistanê de her texlît dehbe û cenawir hene. Gola Wanê goleke spehî ye.

Şanek — Di nav bêjeyên ko bi «an»ekê temam dibin, di hinan de ev « an » ji esil û rayekê bejeyê ye. Mîna: Rewan, baran, peyman, garan, kevan, diran h.d. Lê di hinên din de ev «an» bi xwe, tewang e, û ji ber sebebekê bi wan ve bûye. Mîna: Serhedan, Botan, Şêrwan, Xerzan, Hevêrkan h.d. Ji lewre ev hêjeyên ha bi tu awayî nikarin bêne tewandin. Ji ber vê yekê herwekî mirov dibêje « Ez ji Rowenê têm» nikare bibêje « Ez ji Botanê têm ». Ji ber ko eslê bêjeyê « bot » e, «an»a ko pê ve bûye tewanga gelejmarê ye. Ji xwe gava em Botan dibêjin mexsed « cihê » an «eşîrên Botan » e. Bêjeya « bot » bireserê cih û eşîrê ye û ji lewre hatiye tewandin û bûye « Botan ». Mîna bêjeya « dar » gava dibe bireserê hêjeke din tête tewandin. Herwekî: « pêlên daran ». Bêjeyên wek Serhedan, Şêrwan, Xerzan, Hevêrkan, Soran jî mîna wê ne û tev de yek hawî ne.

Di vê navê de bêjeya « gulan » rexma ko ji vî cisnî ye tête tewandin. Bi rastî eslê vê bêjeyê « meha gul, meha gulan » e; yanî « an » tewang e. Ji lewre diviya bû « gulan » ne hata tewandin. Lê ev bêje ji qeydê der û bi awerteyî careke din jî tête tewandin û dibe « gulanê » û li şûna ko bibêjin « meha gulan » dibêjin « meha gulanê ». Ji ber vê yekê « an »a gulanê divêt ji eslê bêjeyê bête hesibandin.

56 — Awarte: Bi tenê û ji qeydê der di lêkerên gerguhêz û di zemanê wan ên borî de bireserên wan weke xwe dimînin û ji bervajî ve kirarên wan têne tewandin. Ji lewre, di komekên jêrîn de rexma ko bêjeyên: « Zîn, hesp, çêlek, zarok » kirar in, hatine tewandin û bêjeyên; « Sîsin, ceh, pencere » yên ko bireser in weke xwe mane û ne hatine tewandin.

Zinê Sîsin dît. Hespan ceh xwar. Çêlekan giya xwari bû. Zarokan pencere şkênand.

57 — Herçî navdêrên nêr in beke di wan de tîpên « ê » û « a » bene ev navdêr dikarin bi guhartina van tîpan bi « ê » kê jî bêne tewandin. Herwekî di van komekan de: « Soro ji kêvir ket. Gurgîn çû êş. Balafir ber bi ezmên firî. Ez li hêsp siwar bûm. Ferzo ji bajêr têt. Kî li ser bên bû? Em ji xênî derketin ».

Bi vê qeydê ve, divêt di qisetê de hin navdêrên nêr bê tewang bimînin. Ji ber ko di hemî navdêrên nêr de dengdêrên « e » û « a » peyda nabin. Ji lewre û li nik kurdmancên ko bi vê qeydê ve diçin bêjeyên wek: « kum, goşt, dil, hiş, mirov, mêrik, gir, kur, mîr, mêr, gund » nayine tewandin, ji ber ko di wan de ne «e» ne jî «a» heye. Ji ber vê yekê gava ew di qisetê de dibin bireser jî weke xwe diminin. Piştî ko ev qeyde di zmên de cih bûye navdêrên bi « e » û « a » jî di qisetê de bê tewang hatine gotin. Ji lewre herwekî mirov dikare bibêje « ez ji kevirî - an - kêvir ketin » dikare bibêje jî « ez ji kevir ketim » û bêjeya « kevir » netewîne.

Şanek — Ji raveka jorîn dixuye ko di navdêrên

nêr de meyildariya zmên ber bi terikandina tewanga wan a yekejmar e; nemaze şiklê pêşîn. Ji lewre her sê şiklên jêrin rast in.

Soro kevirî tavêje. Soro kêvir tavêje. Soro kevir tavêje.

Gurgîn çû aşî. Gurgîn çû êş. Gurgîn çû aş.

Balafir ber bi ezmanî firî. Balafir ber bi ezmên firî. Balfir, ber bi ezman firî.

Ez li hespî siwar bûm. Ez li hêsp siwar bûm. Ez li hesp siwar bûm.

Ferzo ji bajarî têt. Ferzo ji bajêr têt. Ferzo ji bajar têt.

Kî li ser banî bû? Kî li ser bên bû? Kî li ser ban bû?

Em ji xaniyî derketin. Em ji xênî derketin. Em ji xanî derketin.

58 — Gava çend navdêr didin pey hev herwekî mirov dikare wan navdêra li gora mêjer û zayendê heryekê yek bi yek bitewîne, dikare bi tewandina hinekan jî bes bike.

Navdêrên ko dane pey hev ne ji yek zayendî ne; lê tev de ji yek mêjerî ne. Tewandina navdêra paşîn bes e. «Ez hesp û mehînê dibînim. Ez hesp û mehînan dibînim Hesp û mehînan xwar».

Navdêrên ko dane pey hev, ne ji yek mêjerî ne. Her navdêr cihê û li gora mêjer û zayendê xwe têtê tewandin. «Ez mihê û bizinan dibînim. Ez hêsp û mehînan dibînim. Mihê û bizinan xwar».

Navdêrên ko dane pey hev ji yek mêjerî û tev de yekejmar in, lê ew ne ji yek zayendî ne; û navdêra paşîn nêr e. Ji ber ko di tewangê de esil navdêra paşîn e û hikim li mêjerê wê ye heke ew ne hatiye tewadin navdêra mê ji bê tewang dimîne. «Ezê herim keçik û kurik bibînim. Tu Rewşen û Felemêz dibînî?»

Şanek : 1 — Herçî navdêran ko bi «e» an bi «a» yê temam dibin, çi mê çi nêr, ji ber kurtiyê, di yekejmarê de bi guhartina van tîpan bi «ê» kê jî tenê tewandin. Di gelejmarê de ew «e» û «a» yekcar dikevin û «a»'ya tewangê dikeve şûna wan.

| | |
|---|---|
| Li ser maseyê | Li ser masê |
| Li ser maseyan | Li ser masan |
| Ber bi çiyayî | Ber bi çiyê |
| Ber bi çiyayan | Ber bi çiyan |
| Çirayê vemirîne | Çirê vemirîne |
| Çirayan vemirîne | Çiran vemirîne |
| Perdeyê rake | Perdê rake |
| Perdeyan rake | Perdan rake |

Şanek : 2 — Bêjeyên wek Frense, Sûriye, Emêrîke, Efrîqe h.d. yên ko bi «e» kê temam dibin, heke ew bi guhartina wê «e» yê bi «ê» kê ne hatine tewandin û ketine bin hikmê qeyda gelemper ew «e» bi «a» kê diguhêre û ew bêjê bi awayê jêrîn têne tewandin: Ji Sûriyayê, ji Fransayê, ji Emêrîkayê, ji Efrîqayê. Lê şiklê din, yanî şiklê: Ji Frensê, ji Sûriyê, ji Emêrîkê, ji Efrîqê» siviktir e.

59 — Bireserê Navdêrê: Navdêr di komekê de an bi tena xwe ne, an bêjeyeke din bi wan ve bûye û hevaltiya wan dike. Ji wê bêjeyê re bireser dibêjin; ji ber ko ew mana navdêrê diedilîne û dibe serî.

Bireserên navdêran, li gora cisnên xwe li, pêşî an li paşiya navdêran têne zêde kirin.

Bireser gava dikevin pêşiya navdêran bêî tu tiştî bi wan ve dibin: ev keçik, kîjan mirov, çar xanî, hin çiya, çend kitêb, deh bizin, van zarokan.

Lê gava navdêr bi xwe li pêş e û bireser dane pey, hingê veqetandekek dikeve navbera navdêr û bireser û wan digihîne hev: Beriya Mêrdînê, hespê beza, mehîna spehî, çiyayê bilind, pehnava çiyê, newala kûr, rêke dirêj, stûna xênî, destê bi tenê, dara şikestî, xencera min.

60 — Navdêrek dikare çend bireseran bibe. Hin ji wan dikarin bikevin pêşî hinên din jî paşiya navdêrê. Bireserên ko ketine pêşiya navdêrê û yên ko dane pey wê ji alikî û tev de bireserên navdêrê ne û ji aliyê din ew bi xwe bireserên hev in:

Min çend kitêb hene. Min çend kitêbên qenc hene. Ev xencera min e. Ev xencera xulanê min e. Ev xencera xulamê pismamê min e. Ev xencera xulamê ciranê pismamê min e.

## II — VEQETANDEK

61 — Veqetandek bêjeke kiçik e ko dikeve paşiya navdêran û paşiya wan bêjeyên ko li şûna navdêran radibin û wan dinimînin.

Veqetandek carina di pêşiya rengdêran de jî peyda dibin.

Veqetandek bi gelemperî mêjer û zayendê navdêrê şanî didin û navdêr ji wekhevên wê vediqetînin.

Bi pêvebûna veqetandekê navdêr carina binavkirî û carina jî nebinavkirî dibin.

62 — Di zimanê kurdmancî de du texlît veqetandek hene: veqetandakên binavkirî û veqetandekên nebinavkirî.

63 — Veqetandekên binavkirî: Veqetadekên binavkirî dikevin paşiya navdêrên ko bireserek bi wan ve bûye û ev veqetandek wan navdêran binakirî dikin. Ev navdêr bi vî awayî ji wekhevên xwe vediqetin, dibin xweserî keseki, tiştekî, an wesfekî wan didin zanîn. Veqetandekên binavkirî sisê nê: ê, a, ên.

Ê — Ji bo yekejmara zayendê nêr: Hes-

pê Soro, çiyayê bilind, deriyê malê, dîwarê hewşê, pismamê min, mirovê qenc, kewê nêr.

A — Ji bo yekejmara zayendê mê: Mehîna Cemşîd, newala kûr, dotmama wî, jina delal, stûna stûr, ava tenik, destmala Sinemê, kewa mê.

ÊN — Ji bo gelejmara her du zayendan: Hespên Soro, Çiyayên bilind, deriyên malê, dîwarên hewşê, pismamên min, mirovên qenc, kewên nêr, mehînên Cemşîd, newalên kûr, dotmamên wî, jinên delal, stûnên stûr, avên tenik, destmalên Sinemê, kewên mê.

Bi rastî, gava em « Hespê Soro » dibêjin, vî hespî bi veqetandeka « ê » ji hespên din vediqetînin, û xweserî Soro dikin. Bi vî awayî em dizanin ko ev hesp hespê mirovekî ye ko navê wî Soro ye, û ew ne hespê Gurgîn, Felemêz an mirovekî din e.

Dîsan di mîsala « Çiyayê bilind » de jî bi veqetandekê wesfê bilindbûnê em pê ve dikin û vî çiyayî ji wekhevên wî û nemaze ji çiyayê nizim cida dikin û ferqa bilind û nizimbûnê dixin navbera wan.

Gava em « dotmama wî » dibêjin, em çêlî wê dotmamê dikin ko ne ya min e, ne jî ya te ye, lê ya wî mirovî ye ko ew bi mé her diwan nas e.

64 — Veqetandek di pêşiya rengdêran de: Gava veqetandeka binavkirî dikeve pêşiya rengdêrekê ew li şûna wê navdêrê radibe ko berî bistekê çêl li wê kirine û ew bi xeberbêjan nas e. Hingê veqetandek mîna pronavekî navdêrekê dinimîne. Herwekî di bersivên komekên jêrîn de:

— Tu kîjan kumî dixwazî?

— Ez ê gewir dixwazin (yanî kumê gewir dixwazim).

— Tu kîjan destmalê dixwazî?

— Ez a sor dixwazim (yanî destmala sor dixwazim).

Di gelejmarê de:

— Ez ên gewir dixwazim (yanî kumên gewir dixazim..

— Ez ên sor dixwazim (yanî destmalên sor dixwazim).

65 — Veqetandekên nebinavkirî: Veqetandekên nebinavkirî dikevin paşiya wan navdêrên ko ji wekhevên xwe hatine veqetandin, lê ne hatine bi nav kirin û bi biservebûna van veqetandekan kesine an tiştine nebinavkirî şanî didin. Du texlît veqetandekên nebinavkirî hene: 1 — yên ko dikevin paşiya wan navdêren ko hêj tu bireser bi wan ve ñe bûne, 2 — yên ko dikevin paşiya wan navdêran ko bireserek daye pey wan.

66 — EK, EK, ÎN.

EK — Ji bo yekejmara zayendê nêr.

EK — Ji bo yekejmara zayendê mê.

ÎN — Ji bo gelejmara her du zayendan.

Ev veqetandek dikevin paşiya wan navdêrên ko hêj bi serê xwe ne û tu bireser bi wan ve ne bûne.

| | |
|---|---|
| Hespek hat. | Hespin hatin. |
| Mehînek hat. | Mehînin hatin. |
| Min hespek dît. | Min hespin dîtin. |
| Min mehînek dît. | Min mehînîn dîtin. |
| Ev hespek e. | Ev hespinin in. |
| Ev mehînek e. | Ev mehînin in. |

Gava em « hespek hat » dibêjin, em vî hespî ji wekhevên wî vediqetînin, lê em wî nadin zanîn gelo ev kîjan hesp e? an hespê kê ye? Em wî bi vê veqetandekê nebinavkirî dikin.

Wezîfa veqetandeka nebinavkirî ji hevdûbêja jêrîn xewş têtе seh kirin. Kur ji bavê xwe re dibêje:

— Ezbenî min dît, hespek hat û kete hewşê.

Bav — gelo ew kîjan hesp e? an hespê kê ye?

Kur — Nizanim ez herim lê fedkirim.

Kur diçe, lê fedkire, vedigere û ji bavê xwe re dibêje:

— Ezbenî, hespê ko hat hespê kumêt e; an, hespê ko hat hespê Gurgîn e.

Bêdiro, hetanî ko kur ne çû û li hêsp fenekirî, kur û bav bi tenê dizanîn ko yek ji heywanên ko jê re hesp dibêjin hatiye û ketiye hewşê. Lê ji ber ko tu wesfê wî bi wan ne nas e, ew hesp bi wan ne binavkirî ye û ew nizanin ew kîjan hesp e. Ji lewre veqetandekeke nebinavkirî pêve ye. Lê piştî ko kur diçe lê fedikire û vedigere, hingê kur û bav dizanin ko ew hesp, hespê kumêt e; an hespê Gurgîn e. Bi gotinên din ew hesp bi wan binavkirî dihe. Ji xwe veqetandeka binavkirî « ê » pê ve bûye.

Şanek — Heke navdêrine ji yek mêjerî dane pey hev veqetandekeke bi tenê besî wan e.

Hesp û mehînek hatin. Min keç û kurek hene.

Li şûna:

Hespek û mehînek hatin. Min keçek û kurek hene.

Lê heke navdêr ne ji yek mêjerî ne, hinên wan yekejmar û hinên din gelejmar in, hingê heryek ji wan cihê cihê veqetandeka xwe a xweser dibe.

Hespek û mehînin hatin. Min keçek û kurin hene.

(dûmahîk heye) C. A. Bedir-Xan

# REWŞA DINYAYÊ

HEVDÛDÎTINA RÛWZET Û ÇORÇIL— Mister Rûzwelt reîscimhûrê Emêrikayê heweskarekî masîvaniyê ye. Lê Rûzwelt masiyan ne bi nehk û torên adetî û di perên çem û golan de, lê bi alet û torine mezin û di behran de digire. Rûzwelt car cara û nemaze gava ji xebata hikûmetê diweste li yexta[1] xwe siwar dibe û dikeve behran; diçe masîvaniyê. Masivanî jî mîna nêçîrê kêfek e, bi ferqa ko masî zindî bi dest dikevin.

Di daviya hefta Tirmehê a pêşin de telêgrafan da zanin ko reîscimhûr ji Weşîngtonê, ji Qesira Spî [2] rabûye, ketiye yexta xwe û qesta behran kiriye. Herkesî got reîscimhûr weke bercar çû masiyan.

Piştî çend rojan xelkê Londrê bala xwe da ko reîswezaretê wan jî, ji ber çavan winda bûye û nayete meclisê. Nêrevanîna got: Çorçil çû Emêrîkayê, ewê di behran de xwe bigehîne Rûzwelt.

Hikûmetên ingilîz û emêrikanî ji vê nûçê re ne « herê » gotin ne jî « no ».

Nûçeyên ko ji yexta reîscimhûr dihatin; wan jî qala mêvanan ne dikir û bi tenê digot: dinya xweş e; masî zehf in: reîscimhûr bikêf e.

Ev hal heta 14ê Tirmehê dom kir û kesî ne da zanîn Çorçil li kû ye û çi lê qewimiye.

Li 14ê Tebaxê paşî nîvro di saet pêncan de, Mêcer Etlî, wekîlê Çorçil, di meclisê de da zanin ko Çorçil û Rûzwelt di behra Etlantîkê de gihane hev û li ser şer û nizama dinyayê pev re axaftine, û mideke xweş li cem hev mane.

Di dora vê hevdûdîtinê de gelek tişt hatine gotin. Lê tiştê ko bi awakî resmî hate zanin beyanameyek e.

Çorçil û Rûzwelt piştî vê hevdûdîtinê beyanameyek belav kirin. Di vê beyanamê de heşt niqte hene, wek çardeh niqteyên Wilson. Bi kurtî her du reîs didin zanîn ko Ingiltere û Emêrike ji rehetî û qenciya dinyayê re dixebitin û ji xwe re tu tiştî naxwazin. Şer heta şikestina Elmanyayê wê dom bike û piştî şer her milet divê bigehe şiklê idara ko lê têt û ew jê hez dike; û nabe ko miletek bindestiya miletekî din bike, û herçi dewletên ko elmanan ew hilweşandine ji nû ve wê bêne danîn.

Bivê nevê herçi miletên bindest kêfa xwe ji vê beyanamê re anîne û bêsebr û bedar hêvîdarê anînciha wê ne.

HEVDÛDÎTINA HÎTLER Û MÛSOLÎNÎ — Li 29ê Tebaxê radyowên Berlîn û Romayê dane zanîn ko ji 25ê Tebaxê ve Hîtler û Mûsolînî li cem hev bûn; Mûsolînî çû bû Okranyayê, qerargaha Hîtler. Bi Dûçe re hin kumandarên talyanî jî hebûn. Ji milê elmanan

[1] Yext texlîtek vapor e, vapora geşt û gerê ye.
[2] Qesira spî xaniyê reîscimhûrê Emêrîkê ye.

# Şîretên

EHMEDÊ XANÎ

Rojekê, Ehmedê Xanî şêst zaroyên kurd — keç û kur — birin mala xwe û ji wan re daweteke mezin da. Piştre di nav wan de rûnişt û ji wan re pirsên jêrîn gotin. Dîvê hon wan di dilê xwe de veşêrin, ji ber ko; rêber û zanayê me ê mezin ew ne ji wan şêst zarokên bi tenê re gotine, lê ji bo hemî zaroyên kurd re. Gotinên rehmetî ev in :

Hon piçûk in, hon geş in, bê derd û xem dileyizin û dikevin; ev dema dilxweşiyê ye.

Eger hon dixwazin hergav bextiyar bibin û tucaran pir bedbext nebin li du tiştan bigerin; hejkirin û xebat.

Kî hejî we dike hejî wî bikin : îro hejî merivên xwe bikin; hejî diya xwe, hejî bavê xwe bikin, hejî hevalên xwe bikin, piştre honê hînî hejkirina diya me gişan Kurdistanê bibin.

Ê didoyan; bixebitin; îro ji bo hînbunê, ji bo zaninê bixebitin; da ko halê dinê bizanin, bi pêş ve herin, bibin meriv, bibin hêja, bibin serdest, bibin însan !

Gava hon dersên xwe baş dizanin, dilê mamosteyên xwe xweş dikin. Hon dibînin ko hon jî geş dibin, ji bin barekî giran xelas dibin, sivik dibin. Ev hergav holê ye. Bixebitin da ko wijdana we her gav ji we razî be! Û gava wijdana însan rahet e û dilê wî bi kêf e, ew însan tucaran ne bedbext e.

Zaroyên min ên delal! niha ji bo xatirê min têr bixwin! vexwin! û bikenin! Ez bi we bextiyar im, ez dixwazim hon jî bi min dilxweş bin, da ko welat jî bi hejkirina me hev û du hergav şa be!

NÛREDÎN ÛSIF

jî serfermandarê ordiwa elmanî von Keytel û wezîrê xarciyê von Rîbentrop hazir bûn.

Li gora danezanan di vê hevdûditinê de Hîtler û Mûsolînî li ser nîzama Ewropayê a nû û li ser pêşvebirina şer axaftine.

ŞERÊ ECEM — Di şerê mezin yanî di şêrê 1914an de ecem ne keti bûn şer lê ordiwên dewletên dorê û yên hevalên wan tev de keti bûn axa ecem: ûris, tirk, ingilîz elman. Lê ev ordû tev de û heryek bi awakî ji erdê eceman rabûn û ecem bi serê xwe man û piştî ko şahê pehlewî rabû ser textê ecem, Ecemistan ket riya pêşevçûn û bilindbûnê û ji xwe re ordiweke nizamî jî çêkir, bi tang û balafir û her texlît hacet û hesincawên nû. Eceman di behra faris de, ji xwe re stoleke kiçik jî pêk anî bû. Dibêjin ko ordiwa eceman ji ( 200000 ) peyayî bihevketî ye.

Di vî şerî de her û her û bi her hêncetê eceman bêtrefîya xwe îlan dikir.

Li 25ê Tebaxê, rojeke Duşembê radyowên dinyayê dane zanîn ko ordiwên ingilîz û rûsî ketine erdê Ecemistanê, ûris ji bakur de, ingilîz ji aliyên nivro û roava, ji behra faris û ji erdê Iraqê.

Tukesî li vî şerê nû ecêbmayî ne ma. Ji ber ko di rojên paşin de gelek dan û standin di navbera van her sê dewletan de çêbû bû. Ûris û ingilîzan digot di welatê ecem de elman roj bi roj bêtir dibin û ev elman ji bo her sê dewletan, ûris inglîz û ecem, talûkeke mezin in.

Eceman digot mixdarê elmanan li Ecemistanê (690) peya ye, ne kêm, ne zêde. Lê li gora ûris û ingilîzan ew elman ji (2500)î ji bêtir bûn.

Hevalbedan, yani ûris û ingilîzan digot ev elman li welatê ecem belav bûne û heçî rêhesin, karxane û tiştine ko di wextê şer de bi kêr tên, tev de xistine destên xwe; û di hin cihan de çek, cebirxane, bombe û ( 50000 ) ton dînemît kom kirine. Û ev eleman bi hênceta nêçîrê, di nîzingî Tehranê de, dikevin çolê û bi talîmên eskerî mijûl dibin û xwe karî şêr dikin.

Ji milê din ûrisan tanî bîra eceman ko li gora muahedeya 1921ê heke dewleteke din çavên xwe berda Ecemistanê û ji eceman ne hat ko xwe jê biparêzin hingê ji Ûris re dibe heq ko eskerê xwe bêxe erdê Ecemistnê, bi şertê ko piştî derbasbûna talûkê vî eskerî bi şûn de bikişîne û welatê eceman ji eskerên xwe vala bike.

Hevalbendan çend caran miraceheti hikûmeta eceman kir û jê xwest ko wan elmanan ji welatê xwe derîne. Wer dixuya ko gotin û cihabên eceman ne diket serê ûris û ingilîzan û dilê wan li wan gotinan rûnedinişt.

Eceman digot elman jî wek biyaniyên din di bin nezaretê de ne û bi karê xwe mijûl in. Lê heye ko em hinên wan ji Ecemistanê derînin. Herçî cerîdeyên ecemî fortên xwe didan û digotin; Ecemistan bêteref e, lê heke dewletekê dirêji wê kir ewê di pêşiya xwe de ordiwa Ecemistanê dê bibîne, çêliyên ecem ji bo istiqlala welatê xwe bêperwa xwîna xwe wê birijînin. Ecem nahilin ko xelkê xerib bên û pê li erdê wan bikin Tirkan jî nav di eceman dida û digot Ecemistana Şahê Pehlewî ne Ecemistana kevn e. Ecemistana îro dewleteke newîn û bi her awayî xurt e.

Ûris û ingilîz dihesiyan ko ecem bi wan dilehîze û dixwaze vî îşî ji bêxe herenayê. Eceman dixwest bi siyaseta xwe a kevin û bi sibe û dusibê her du aliyan bigerîne û di dema paşin de bi aliyê xurt ve bibe.

Li ser vê yekê û li 25ê Tebaxê, sibê saet çaran de sefîrên ûris û ingilîzi çûne mala wezîrariciyê Ecemistanê û noteyên hikûmetên xwe ji wezîrê ecem re ber pê kirin.

Wan notan tiştên ko me li jor gotine dihejmartin û bi ser ve zêde dikirin ko vegertina Ecemistanê tiştekî miweqet e û tu dijminahiya ûris û ingilîzan di heqê eceman de nine.

Dema sefîran noteyên xwe digihandine wezîrêxaiciyê Ecemistanê ordiwên wan ji diketin erdê Şahê ecem. Eceman di hin cihan de dest biri be jî xwe, xwe gelek ne êşand û çêtir dît ko xwe bide alî, û rê bide mêvanên xwe. Ûris ji jor de, ingilîz ji jêr ve zûka meşiyan û ketin hin bajarên Ecemistanê. Ingilîzan dest danî bîrên pêtrolê, bêî ko ecem bikarin xesarê bigihînin wan. Tirkiya ko nav di eceman dida û li gora peymana Sadabadê diviya bû here arîkariya Ecemistanê, xwe tev ne da û weke hercar da zanin ko di vî şerî de jî bêteref e. Bi tenê got heyfa Ecemistanê, tu sûc û gunehên wê nînin.

Herwekî me got eceman di hin deran de çend tifing teqandin, lê xwe ne dane ber û bi şûn de kişiyan.

Sibetirê, eceman ji dijminên xwe mitareke xwest. Ûris û ingilîzan şertên eceman bi şûn de avêtin û yekcar ketine hundirê welêt. Şahê ecem gava dît ko ûris û ingilîz guh na-

## BILÛRA MIN

Bilûra min a şîrîn,
Tu di sariya sibehê
Û hingura êvarê de
Hevalê bêbevalan,
Destbrayê şivan û dilketiyan î.
Dengê te,
Hêstirên dilên xemgîran,
Silava ji hev-veqetiyan,
Girîn û zarîna dilketiyan
Tîne bîra min.
Bilûra min tu î,
Xemrevîna terkeserên dinyayê !!

☆ ☆ ☆

Dengê bilûra min,
Çiya û zozanên bilind,
Kaniyên bi gul û rîhan dorgirtî,
Guhê şkeft û serê zinaran
Guhdarên te ne !!
Û sura bayê xerbî,
Te di nav pelên darê de digerîne.

★ ★ ★

Bilûra min, were emê
Bi wî çiyayê bilind re
Bi bewa kevin,
Û bihin cîranê bayên xurt
Û hevalê kimtên wan
Yên bi mij û dûman,
Û tê de dengê xwe berdin,
Û zarîna dengê me
Bikeve nav kortal û geliyan
Û bêcaniya erdên jêrîn
Bihejîne;
Û pêlên ava heftreng
Ên xemzebaz
Nalîna me bigehîne
Deşta Sirûc û Diyarbekrê;
Û beriya mêrxasên Berazan;
Û kalîna berxan,
Tev şehîna hespan
Li me vegerînin.

★ ★ ★

Bilûra min, binêre û bibibîse!
Roj çû ava,
Stêra êvarê bû geş,
Kolosên çiyan ên gewr,
Û hewraniyên wan ên sor û zêrîn
Bûne cûn;
Û pêlên ava şevê ên reş
Ketine deşt û nevalan,
Heta rûyê gir û kepezan.
Di qeraca de
Kevir piyê şevgera dixapînin,
Û bêdengiya şevê de
Pêjna lingên mêrxasan tên.

★ ★ ★

Bilûra min,
Dengê xwe berde !!
Dinya,
Mîna zarokekî berşîr,
Ket dergûşa xwe;
Dengê xwe berde bilûra min,
Û jê re bilorîne,
Xema wê birevîne !!
Bilûra min tu î

☆ ☆ ☆

Xemrevîna terkeserên dinyayê;
Û li rohelatî
Dema ko dinya hişyar dibe
Ji xew radibe
Ji me re
Strana azahî û serbestiya
Kurdistanê
Binehwirîne
Û dengê wê stranê, bila
Mîna tirêjên rojê ên pak û zêrîn
Bikeve nav dil û guhên me.
Bilûra min
Tu î xemrevîna dilketiyên welêt.

SEYDAYÊ GEROK

---

dîn ê, hikûmeta xwe guhart, û hikûmeta nû bi raya meclisê û bi emrê Şah şer da betal kirin û ordiwê dest ji şer berda, yanî ecem teslim hûn, û şerê ko roja Duşembê dest pê kiri bû roja Pêncşembê û bi selametî xelas bû. Bawer bikin cem eceman şer jî betaliyê ne çêtir e, û her tişt ji şer çêtir e. Ji xwe ecaman bi xwe gotiye canê şêrîn xweş e, merencîne.

Lê ordiwên ûris û ingilizî bi lez Ecemistanê vedigirin. Mister Îdin di meclisê de da zanîn ko ew esker bi mîweqetî lê heta roja ko talûke derbas bibe wê li Ecemistanê bimînin.

DI ROHELATÊ DÛR DE—Di rohelatê dûr de dîzik dikele, lê hêj ne avêtiye der. Japonan Hindiçîniya trensizi bi temamî vegirtin û gihaştine tixûbên Siyam û Hindistanê. Li gora nûçeyên paşîn japonan (150000) esker anîne Hindiçîniyê Ingilîz û emêrîkaniyan jî wargehên Sêngepor û Filipînê xurt kirine. Te digot qey hema li hev xin. Lê tiştek ne bû û kela beroşê danî.

Ji aliyê din, japonan di Mençûriyê de eskerên xwe ser tixûbên ûris kom dikin.

Piştî şerê rûs û elmanî ûris û ingilîz û emêrîkani bûne yek. Ingilîz û emêrîkanî dikin bi her awayî arikariya ûris bikin. Ev arikarî nemaze ji bo karkirina şerê Biharê wê bête kirin. Lê Emêrîke ji niho de dike hin tiştan bişîne Rûsyayê; nemaze benzîna balafiran. Ji bo vê yekê jî Emêrîkê çar vaporên bi sarinc dane ûris. Ew vapor benzînê ji Emêrîkê wê bînin Veladivestokê, bendereke rûsî. Ev bender dikeve pêşberê giravên Japonyayê û vaporên ko berê xwe didin wê bebenderê di ber û di nav giravên japonan re derbas bibin.

Ev îş li japonan zehmet e. Di welatê japonan de petrol nîne û Emêrîke jî hew petrolê dide japonan. Ji milê din ûrisan petrolên Qevqasê ne di riya bejê re lê di riya behrê re dişandin Sîbêryayê. Piştî şerê elmanan bivê nevê vaporên rûsî êdî ne dikarî bûn ji Batomê rabin û herin Sîbêryayê. Japonan digot bi vî awayî ûris di Sîbêryayê de bê benzîn bimîne. Lê gava japonan dît ko Emêrîke benzînê dide ûris gelek li ber xwe ket û got ez vî îşî qebûl nakim.

Digel vê hindê vaporeke benzînê ji Emêrîkê rabû, di ber pozê japonan re derbas bû û hat û ket Veladîvestokê. Japonan bi tenê dengê xwe bilind kir û ev tişt cem Ûris û Emêrîkê protêsto kir, yanî ji wan dewletan re mektûb şand û got ev îş ne bi

dilê mîn e, û heye ko ji ber vê yekê navbera me xerab bibe.

Kesî nezanî çawan û çire, lê ji nişkekê ve kela japonan danî û li gora nûçeyên paşîn Japon û Emêrîke ketine mizakeran, mizakereyên sirî. Ew mizakere jî rast bi rast bi destên Rûzwelt têne gerandin.

ŞERÊ ÛRIS — Şerê ûris û elmanan bi xurtiya xwe a berê dom dike. Bi tenê elmanan plana xwe guhartiye û berê xwe daye nîvro û paşê jî bakur.

Herwekî me di hejmara 31ê de gotî bû elmanan, nemaze, zora xwe dida eniya Smolenskê. Bajar bi xwe ji mêj ve ketî bû destên elmanan, lê şer di wê hindavê de dibû, û ji lewre jê re eniya Smolenskê dibêjin.

Elmanan zora xwe dida vê eniyê, ji ber ko ev der mifteya riya Moskoyê ye. Di vê eniyê de şerine mezin çêbûn. Qederê çar heftan, elmanan di vê eniyê de dreji xetên ûris kir, lê ew xet nikarî bûn bişkênin û riya Moskoyê ji xwe re vekin. Bivê nevê birê ordiwa ûris ê meztir yanî giraniya wê di vê qadê de bû û li ber payîtextê welatê xwe disekinî. Elmanan dixwest vê ordiwê bişkênîne, bikeve zikê welêt û ordiwa ûris ji hev de bêxe. Lê elmanan piştî ko mehekê, û bel ko bikarin gavekê jî pêş ve herin, di vê eniyê de şer kirin, plana xwe guhartin û qesta nîvro, qesta Behra reş kirin û li 16ê Tirmehê Nîkolayef zemt kirin. Di behra reş de tersxana ûris di vê benderê de ye. Di vê benderê de hin cengkeştiyên nîvco, hêj li ser taxokan, ketine destê elmanan. Ûris dibêjin me ew cengkeştî beriya ko terka benderê bidin, xerab kirine. Elman dibêjin, tu xisar ne gihaye wan. Di nav wan cengkeştiyan de yeke mezin hebû bi ( 35 000 ) tonî, Krewzorek jî bi ( 10 000 ) tonî.

Nîzingî Nîkolayefê bendereke din heye: Odêsa. Ûris tê de asê bûne, elman digel romanan lê wer hatine, ew di mihaserê de hiştine, pêş de çûne, û ji erdê Ûkranyayê herçî li roavayê çemê Dinyêper e, tev de xistine destê xwe û li 27ê Tebaxê ketine Dinyêpetrovskê. Erdê Ûkranyayê erdekî hêja û ew der mintiqeke sinhetê ye. Li Dinyêpetrovskê febrîqeke elêktrîkê heye. Dibêjin ko di dinyayê de jê meztir febrîqa elêktrîkê nîne. Lê ûrisan da zanîn ko bendên febrîqê berhewa kirine û erdên dorê xistine bin avê. Eskerên ûris derbasî wî aliyê çem bûne û li ber xwe didin.

Herwekî me got elmanan ji milê din berê xwe da bakur û direjî Lênîngradê kir. Lênîngrad payîtextê ûrisan ê kevn e. Çar yanî imperatorên ûris tê de rûdiniştin. Ji xwe berê jê re Petresbûrg — Petrograd digotin. Piştî bolşêvîkiye navê wê guhartîn û navê « Lênîn » lê kirine.

Li 28ê Tebaxê elmanan di bakur de ketine Rêvalê ( Talin ). Rêval di Estonyayê de bendereke mezin e û tê de tersxane yanî febrîqa vaporan heye. Rêval dikeve devê Behra Fenlandiyayê. Hesêb ev behir ketiye destê elmanan û vaporên ûris tê de girtî mane. Di wê benderê de ûrisan bi xwe bin cengkeştiyên xwe bin av kirine da ko nekevin destên elmanan. Ûris beriya ko jê derkevin avahiyên benderê ji şewitandane.

Bi ketina Rêvalê rewşa Lênîngradê yekcar zehmet bûye. Niho, elman ji nîvro, û ji rohelê direjî Lênîngradê dikin. Ji bakur ve ordiwa Fenlendiyayê berê xwe daye payîtextê çaran û li 30ê Tebaxê ketiye Vîpûriyê ( Vîborg ).

Di navbera Mosko û Lênîngradê de du xetên rêhesin hene. Elmanan ji van her du xetan yek xerab kiriye û avêtiye ser a din. Heke a din jî hate xerab kirin Lênîngrad yekcar ji welêt wê qut bibe.

Ûris û elman her du ji fortên xwe didin, lê rastî ew e ko ev şer şerekî dijwar e û ordiwa elmanan heta niho miqawemeta ko di şerê Ûris de dîtiye di tu şerî de ne dîtî bû. Ûris bişkên jî li ber xwe didin û gelek caran radibin hicûmê, hicûma miqabil, em jê re bi kurdmancî bibêjin berhicûm. Di şerê ûris da tabiya elmanan ne vegertina welêt e, ne jî kuştina peyan e. Ji ber ko ne welat bi vegertinê, ne jî peya bi kuştinê xelas dibin; welat ewçend fireh, peya ewçend zehf in. Elman dixwazin di deravine teng de li ordiwa ûris bişidinin û wê ji desthilaninê bêxin. Elmanan çend caran kês li dijminê xwe anî be jî plana xwe bi temamî nikarî bû bibe serî. Welat ewçend fireh e ko gava cih li ûrisan teng dibe birek ji wan here jî birê din xwe dide paş û di devereke din de xwe ji nû ve saz dike û dertêt pêşiya dijmin. Ji vî hawayî ev şer ji texminan bêtir dom kiriye û heye ko hêj bêtir jî dom bike. Ji xwe Ingiltere û Emêrîke xwe kar dikin ko li Biharê arîkariya ûris bikin û ji lewre jî ji niho de ûris û ingilîz di Ecemistanê re ji xwe re rê jî vedikin da ko di bejekê re bikarin bigehin hev.

Di Şerê ûris û elmanan de bivê nevê kuştî û birîndar zehf in. Ûrisan carekê goti bû ko xesara elmanan digel kuştî, birîndar û hêsiran du milyon û niv e. Elmanan zûka danezanek belav kir û got ko xesara ûrisan pênc milyon e. Mina kurdmancan got devê xelkê ne doxwîna mirov e, gotin jî ne pez in ko bijmêrînin û jê qemçûrê bibin, ji lewre herkes bi kêfa xwe ye û li gora xwe dibêje.

Me goti bû ko elman ji hicûma Smolenskê geriya bûn û zora xwe da bûn nivro û bakûr. Ji danezanên her du aliyan dixuye ko vê carê û ji 26ê Tebaxê ve di eniya Smolenokê de ûrisan dest bi hicûmê kiriye. Elman qala vê bicûmê dikin û dibêjin me dijmin bi şûn de vegerand û xesareke mezin gihande wi. Herçî ji hebe tu şik tê de nîne ko işê elmanan di şerê ûris d zehmet bûye û ûris şerê xwe xweş dikin.

ŞERÊ EFRÎQAYÊ — Herweki xwendevanên me dizanin li Efrîqê şer di du qadan de çêdibû. Hebeşistan û Libye. Ingilîzan ji mêj ve Hebeşistan ji destên talyanan standine. Li Hebeşistanê hesêb tu talyan ne mane.

Herçî şerê Libyayê, ji ber germa Havînê, sivik bûye. Lê divê li Paîzê ji nû ve dest pê bike. Ji xwe di dirêjahiya Havînê de her du aliyan tidarika xwe dikir. Çend caran ingilîzan di Behra Spî de drêjî vaporên talyanî kirine; yên ko esker û hesincawên cengî tanin Libyayê. Wer dixuye ko ji ingilîzan ra ji Emêrikê û di qenala Swêşê re gelek teng û balafır hatine. Heke di welatê ûris de bi sarbûna hewayê şer jî wê sar bibe; li Efriqayê bi sarbûna hewayê şer wê germ bibe.

## HINDIK RINDIK

ZANÎN Û NEZANÎN — Herçend mirov nezan e, xwe ewçend zana dihesibîne. Ji xwe zanayên nezaniya xwe kêm in. Fedkirin zanayên rastîn di vê babetê de çi dibêjin:

Ez bi tenê tiştekî dizanim; ew jî ev e ko ez bi tu tiştî nizanim. ( Sokrat )

Mirov herçend dide eqilê xwe, ewçend dibîne ko bi tu tiştî nizane. ( Voltêr )

Divêt mirov gelekî xwendi û xebitî be da ko bikare tişteki hindik bizane. ( Monteskyö )

Di dinyayê de sê texlit nezanî hene: Bi tu tiştî nezanîn, kêm û nerast zanîn; bi tiştine welê zanîn ko bi kêrî xwedî nayin. (Dûklos)

Tiştê ko mirov pê nizane ew di ber çavên wî de bêkêr e. ( Fontnêl )

Bi adetî, yên ko hindik dizanin gelek dipeyivin û yên ko gelek dizanin hindik dipeyivin. ( Rûso )

Heke mirov ev her du tişt danîne ber hev, dibîne ko tiştê ko pê dizane, li gora tiştên ko pê nizane, gelek hindik e. ( Fontnêl )

EYLOYÊN DERKETÎ — Ev şerê ha ne bi tenê li mirovan, lê li heywanan ji dihikume. Têxlîtek eylo hene, ji wan re eyloyên şehane dibêjin. Ev eylo li Ewropayê heke yekcar winda ne bûne ji gelek kêm bûne. Lê vê paşiyê refîna ji van eyloyan dirêjî Spanyayê kirine. Dibêjin ko çarmedora van eyloyan sê mêtir e. Wer dixuye ko ev eylo ji ber şerê ûris û elmanan bêgav mane, ji ber top û tifing û bombeyên balafiran revîne û berê xwe dane tixûbên Spanyayê, çiyayên Navarê. Ev eylo ji bo keriyên pez ji guran bi talûketir in. Se bi wan nikarin, ji ber ko ew ji ezmên datên û beranine mezin dixin nav neperûşkên xwe û direvin. Refeki wan keriki pez ji hev de dixin. Ji lewre notirvanên tixûbên Spanyayê li wan şargeh bûne û wan dikujin. Heta niho ji van eyloyan 20 dene hatine kuştin.

XEBATA DI NAV CIHAN — Herçî em kudmanc gava qala xelkê Ewropayê, qala awayê xebata wan dikin, di dilê xwe de dibêjin ew camêrên ha serê sibehê, gava radibin serçavên xwe dişon, serên xwe kur dikin û li ber maseyên xwe rep û rast rûdinin û welê dixebitin. Ne ko mina me çarmêlkî an li ser çong û nivekê rûnin, an çend balgihan bidin ber enişka xwe, pal bidin û bi îşê xwe mijûl bibin. Ji lewre heke min ji we re got ko reîshikûmetê Ingilterê di nav cihan de dixebite heye ko hon li min ecêbmayî bimînin. Belê Mister Çorçil an di nav nivînê de an di hemamê de dixebite.

Belê Mister Çorçil hero sibe zû saet heftan de têt daira wezaretê. Di qata jêrin de odeke wî heye. Tê de nivina wî raxisti ye. Çorçil rast bi rast diçe wê odê, cilên xwe ji xwe dike enteriyê xwe werdigre dikeve nav cihan û tê de xwiriniya xwe dişkênîne. Piştî ko têr xwar rojnameyên xwe dixwîne û bani katibên xwe dike û di nav nivînê de dixebite, û heta dema taştiyê di vî hali de dimîne. Wextê nîvro ji nav cihan radibe cilên xwe li xwe dike û diçe taştiyê. Û gava dikeve hemamê jî katibê wî li pişt derî ye. Çorçil ji nav avê jê re nitqekê an tişteki din dide nivîsandin. XEBERGUHÊZ

# Kitêbxana Hawarê

Hejmar:

1 — Rêzana Elfabiya Kurdî C. A. Bedir-Xan.
2 — Rupelnine Elfabê C. A. Bedir-Xan.
3 — Dilê Kurên Min Dr. K. A. Bedir-Xan.
4 — Bîyişa Pêxember. Bi Kurdiya dumilî, bi dibaca C. A. Bedir-Xan
5 — Nîvêjên Êzediyan bi dibaca C. A. Bedir-Xan
6 — Mektûb ji Mistefa Kemal paşê re
7 C. A. Bedir-Xan
1 — Mesela Kurdistanê Bazil Nikitin
8 — Ji mesela Kurdistanê C. A. Bedir-Xan
9 — Elfabeya Kurdî Dr. K. A. Bedir-Xan
10— Xwendina Kurdî Dr. K. A. Bedir-Xan
11— Elfabeya min Dr. K. A. Bedir-Xan
12— Dersên Şerîetê Dr. K. A. Bedir-Xan
13— Çarînên Xeyam Dr. K. A. Bedir-Xan
14— Proverbes Kurdes. Medhelokên Kurdî Lucy Paule Margueritte û Emîr. K. A. Bedir-Xan Paris - 1937.
15— Le roi du Kurdistan Qralê Kurdistanê. Emir K. A. Bedir-Xan û Adolphe de Falgerolle. Paris - 1937
6— Der Adler von Kurdistan. Eyloyê Kurdistanê. Prinz K. A Bedir-Xan û Herbert Örtel Berlin - 1937
17 — Der Schnee Des Lichtes. Berfa Ronahiyê Şihrên Kurdî Prinz. K. A. Bedir-Xan û Dr. Curt Wunderlich Berlin - 1937

# Kiryariya Hawarê

| | | | |
|---|---|---|---|
| Salî | 500 | Qirûşên | Sûrî |
| Şeşmehî | 300 | Qirûşên | Sûrî |
| Sêmehî | 200 | Qirûşên | Sûrî |

Xwedî û gerînendeyê berpirsiyar: Mir Celadet Alî Bedir-Xan. Şam—Sûriye
Directeur Propriétaire: Emir Djéladet Aali Bedir-Khan. Damas—Syrie

SAL 9
HEJMAR 33

ÇARŞEMB
1 ÇIRIYA-PÊŞÎN 1941

# HAWAR

ANNEE 9
NUMERO 33

MERCREDI
1 OCTOBRE 1941

## KOVARA KURDÎ ✶ REVUE KURDE

### TÊXISTIYÊN VÊ HEJMARÊ



ŞAM—1941
ÇAPXANA SEBATÊ

SAL 9
HEJMAR 33
ÇARŞEMB
1 ÇIRIYA-PÊŞÎN 1941

# HAWAR

ANNEE 9
NUMERO 33
MERCREDI
1 OCTOBRE 1941

KOVARA KURDÎ ✶ REVUE KURDE

## TEFSÎRA QURANÊ

167 - Bindestiyên wan dibêjin: Vegera me li dinyayê hebiwa, herwekî wan nefsa xwe ji me dûr xist me jî xwe ji wan wê dûr bixista. Xwedê emelên wan ên xirab dê şanî wan bide û ewê binalin. Herhal ew agirketî ne û jê dernakevin.

168 - Gelî mirovino.... Ji hatinên erdê tiştên qenc û helal bixwin û me kevin ser şopa Iblîs; Iblîs dijminê we ê nas û xedar e.

169 - Iblîs we bi tenê hînî tiştine xirab û bêar dike û ew nav di we dide heta ko hon di heqê Xwedê da tiştina bibêjin ko hon xwe bi xwe rastiya wan nizanin.

170 - Gava ji wan re têle gotin: Bikevin pey kitêba Xwedê; ew dibêjin: Em bi ya kal û kalikên xwe dikin. Ma ev çawan dibe? Kal û kalikên wan nezan bûn, û ne da bûn ser riya rastiyê.

171 - Halê kafiran, mîna pez û seyên şivanekî ne. Şivan banî wan dike, ew dengê şivên dibihîsin lê mana gotina şivên seh nakin. Ew ker, kor û lal in; seh na kin, serwext na bin.

172 - Gelî bawermendino! Heke hon di ibadeta xwe de dilpak in, ji tiştên qenc yên ko me dane we bixwin û şikirdarên Xudayê xwe bibin.

173 - Goştê heywanên mirî, gostê berazan û xwîna heywanên şerjêkirî. û goştê heywanên ko ne bi anîna navê Xwedê, lê bi anîna navê pût an xaçeke din hatine şerjêkirin; ji we re heram e.

Lê yê ko ji ber bêgaviyê, bêî ko dilê wî lê biçe û zikê xwe bi wan têr bike, heke ji wan tiştan hinik xwar gunehkar na be.

Eftwa Xuda mezin e û Xwedê piyar e.

174 - Zanayên cuhiyan yên ko hicet û şehdetiyên kitêba xwe Tewratê li ser Cenabê Mihemed vedişêrin û bi vî awayî çend peran dikin destên xwe rêderketî ne. Ew pereyên ko wan xwar di roja piştdawiyê de, di zikê wan de dê bibe agirekî sor.

Di roja axiretê de, Xuda bi wan re na xêve, kerema Xuda na gihe wan û ew ji gunehên xwe yekcar paqij na bin û ji wan re ezabekî giran heye.

175 - Ew ji wan in ko bi rastiyê nerastî û bi xufranê ezêb kirîne. Ew bi çi êşeke giran dê bêne şewitandin.

176 - Ji ber ko ew hikmên kitêbên Xuda veşartin û bi hin kitêbên Xwedê baweriya xwe anîn û bi hinên din bawer ne bûne.

Ev serhişkî û nehevgirtina wan ji rastiyê çende dûr e.

177- Nîşana pakdilî û bawermendiyê ne bi dana rûyê xwe ber bi aliyê rojhelat û rojava ve ye, lêbelê dilrastî û bawermendî ew e ko mirov baweriya xwe bi Xwedê û bi roja pişdawiyê, bi melaîketan, bi kitêban û bi pêxemberên Xuda bîne û bi xweşdilî ji malê xwe arikariya mirovên di xwe, sêwî, rêwingî, parsek, û belengazan bike, û dîsa ji bona azadkirina dîl û hêsîran bi peran arîkarê wan bibe; rabe nimêjê û zekatê bide, û heke bext da ji bextê xwe ne zivire, li ser bimîne û tengasiyê de sebir bike, dilê xwe sist ne ke. Yên dilrast ew in û ew ji dil ji Xwedê ditirsin, tobedarên Xuda ne û ketine ser riya Xwede.

178 - Gelî bawermendino ...,. Di kuştina hev û du de, li ser we bi qisasî hatiye emir kirin

Mirovê aza bi aza re, yê dîl bi dîl re, jin û dot bi jin û dot re têne qisas kirin.

Xwînî divê cezayê xwe hinga kirina xwe bikişîne.

Lê dayîna bedîla xwînê jî, ji we re heye.

Yê ko bedîla kuştiyê xwe dixwaze, divê tiştekî bi hinga şehîniya kuştiyê xwe ( yê kuştî ) bixwaze, ne jê zêdetir.

Xwînî jî divê di dana xwe de têrçav û camêr be.

Ev destûr li ser bedîla xwînê ji we re ji ber Xwedê ve sivikahî û piyariyek e.

Yê ko piştî standina ewada xwîna xwe, dest bi kuştina xwînî dike, jê re ezabekî dijwar heye.

179 - Gelî mirovên bijîr.... Di qisasî de jiyîn heye. Xuda bi emrê qisasî canê we diparêze; ta ko hon ji tirsa qisasî dest ji kuştina xelkê bikişînin û bi wî awayî xwe, bi destê xwe ne din kuştin.

180 - Ji we re emrê Xuda ye, gava mirin nîzikî we dibe, heke hon dewlemend in, ji dê û bav û mirovên di xwe re tiştekî li gora marûfê ango ji malê xwe, ji sê paran behrekê wesiyet bikin. Ev li ser bawermendan heq e.[1]

181 - Yên ko guhdariya wesiyetekê kirine heke ew piştre hikmê wê wesiyetê diguhêrînin, guneha guhartina wê li ser wan e. Xwedê dibihîse û dizane.

182 - Lê yê ko di wesiyetekê de nediristiyekê dibîne û ji gunehkarbûna wesiyetdarî ditirse û ji ber vê yekê mana wesiyetê ji ber edaletê ve, li hev tîne jê re tu guneh nîne.

Xuda di gunehên evdên xwe dibore, Xuda piyar e.

183 - Gelî bawermendino .... Girtina rojiyê ji we re ferz bûye, herwekî ew ji pêşiyên we re jî ferz bû bû, heta ko hon xwe bidine riya Xwedê û dest ji gunehan bikişînin.

184 - Rojên rojiyê ên ferz hejmartî ne; ( bîst û neh an sih roj in. ) Yên ko seba nesaxiyê an ji ber rêveçûnê rojiya xwe xwarin, divê ew bi hinga wan rojan, di rojine din de rojiyê bigirin; û yên ko dikarin rojiya xwe bigirin lê ji seba qelsiyê na girin, divê ew bedela her roja ko rojiya xwe ne girtin nanê belengazekî bidin.

Her kesê ko qenciya xwe bêtir dike qencî digehe wî.

Lê heke hon rojiya xwe digirin, ji we re ji dana nanî çêtir e.

Heke hon serwext biwan û we ew seh bikira .....

185 - Xuda Quranê di meha remezanê de bend bi bend, şandiye xwar. Quran riya rastiyê û emrên Xuda pêş we dike û rastî û xwariyê ji hev dike.

Destpêka meha remezanê de ko çavê we bi heyvê ket an we pê bihist dest bi rojiyê bikin.

Lê yên ko nesax in an bi rê ve diçin û ji ber vê yekê rojiya xwe dixwin, divê ew di rojine din de rojiya xwe bigirin.

Xwedê ji kerema xwe îşê we giran na ke lê sivik dike.

Hon jî rojiya xwe bi timamî bigirin û rojiya xwe li gora emrê Xuda biqedînin.

Qedrê Xuda bigirin, bi mezinahiya wî bîrewer bin, û şikirdarên Xudayê xwe bibin.

186 - Ko evdê min pirsa min ji te kirin, bêje wan:"

Ez nîzik im, ez têm hêviya hêvîdarên xwe, bila hêviya min bikin û bila ew ji baweriya xwe bi min bînin û guhdariya emr û fermanên min bikin heta ko pê bîrewer û serwext bibin.

[1] Ev ayeta he bi ayeta mîrasê hate rakirin.

Ji bona Tefsîra Quranê K. K. û li hejmarên 27, 28, 29, 30, 31 û 32 an fedkirin.

MELAYÊ ERWASÊ — Melayê Erwasê kitêbeke kiçik lê hêja nivîsandiye. Kitêba wî li ser nexweşî û dermanên wan e. Mela tê de qala nexweşiyan dike û dermanê her nexweşiyê û çêkirina dermanên jî dibêje. Min bi xwe kitêb ne dîtiye, ez bi saxlûxdanê dibêjim. Dîsan rawiyan gote min ko Melayê Erwasî di wextê Evdil - Xanê bavê Bedir - Xan de rabûye. Li gora vê û bi texmîn Mela beriya niho bi 150 salî emir kiriye. Ji kitêba wî re Tiba Melayê Erwasê dibêjin.

KITÊBEKE HISABÎ — Vê paşiyê kitêbeke kiçik ketiye destên min. Kitêbeke mewzûn. Tê de qala hisabi kirine. Ev in çend beytên wê:

Neh caran neh bi xwe hesêb ke biltemam
Heştê û yek in, tu bizan ya ez xulam.
Heşt caran çar çend in eya şîrînbira
Ew sih û dû ne herçî zêde ji te re.
Heft caran pênc çend in eya tiflê piçûk
Ew sih û pênc in da ko pê nebî xudûk.
Şeş caran sê çend in eya sahib meqal
Ew deh û heşt in tu bizan ya pîrê kal.
Pênc caran pênc çend in ey mêrê çak
Ew bîst û pênc in tu bizan ey canê çak.
Çar caran heft çend in tu bêje vê demê
Ew bîst û heşt in da tu hilnegrî xemê.
Sê caran neh bo te beyan kim ya delal
Ew bîst û heft in tu bizane ya heval.
Du caran çar çend in min bo te kirye xet
Ew heşt temam in der vê nezma pir xelet.
Êk caran êk êk e bizan ya nasiha
Bo feqîrê koyî bêjin fatiha.

Di dawiya vê kitêbokê de hi erebî şerhek heye. Li gora vê şerhê xwedî kitêba xwe di şala 1345ê romî de nezim kiriye; berî hevdeh salan. Gelo li kû derê? Li Tirkiyê, Iraqê an Sûriyê ?

Xwendevanên delal. Ev nivîsara ko ji bo kitêbekê hindik lê ji bo bendekê hinek zêde ye, li hire temam bûye. Herwekî min ji we re got li vê hendê ne wek bendeke tarîxa edebiyatê lê wek lîsteke şahirên me ên kevin fedkirin. Hingê hon dikarin xwe ji şaşbûnê biparêzin.

HEREKOL AZÎZAN

---

LI DINYAYÊ ÇIQAS HEYWAN HENE — Tukesî heywanên dinyayê ne hejmartine lê bi texmîn hejmarên jêrin pêk ve anîne.

580 milyon pezên mêşinî. 100 milyon pezên bizinî. 120 milyon ga û gamêş. 180 milyon beraz. 90 milyon hesp. 15 milyon ker. 2 milyon hêştir. 900000 rên. Rên texlîtek gakovî ye; li bakurê Ewropê û Emêrîkayê dijî. Xelkê wan welatan ew kedî kirine û ji wan re taxok û ereban didin kişandin.

# REWŞA DINYAYÊ

ÎŞÊ SPÎÇBERGÊ — Li bakurê Novêjê giravek heye jê re Sepîçberg dibêjin. Ev girav ji beja Ewropayê ji 500 kîlometrî bêtir dûr e, mirov dikare bibêje ev girav li perê dinyayê. Ji xwe jê we ve dinya qeşa ye. Li 8ê Îlonê Mister Çorçil di meclisê de da zanîn ko eskerên sondxwariyan derketine wê giravê. Mister Çorçil bi ser ve zêde kir û got ko sondxwariyan bi vê vegertinê pêşî ji elmanan standiye. Bi vî awayî ingilîz bûne hakimê bakurê Ewropayê. Ji xwe girav aidî Norvêjê ye. Lê giraveke bê xêr e. Bi tenê tê de hin kanên rejûyê hene. Divêt ji awirê eskerî ve û nemaze ji bo şerê Etlantîkê ehemiyeta wê hebe.

ŞERÊ ETLANTÎKÊ — Di şerê Etlantîkê de vê paşiyê tiştekî mezin û bi ehemiyet qewimiye. Herwekî xwendevanên me dizanin ji destpêka şerî ve Emêrîke bi ingilîzan re ye û ew bi her awayî arîkariya Ingilterê dike. Vê paşiyê cengkeştiyên emêrîkanî di Etlantîkê de gava noqar û cenkeştiyên elmanan dîdîtin elam didan ingilîzan ko bên û li wan xin. Li 10ê Îlonê Mister Rûzwelt nitqek got û tê de da zanîn ko ji niho pê de cengkeştiyên emîrakanî di Etlantîkê de herçî noqar, balafir û cengkeştiyên elmanî yên ko bi biwara wan kevin ewê li wan xin. Jî xwe elmanan vê paşiyê çend vaporên emerîkanî yên ko çek û posat tanîn Ingilterê di Behra Sor û di Etlantîkê de bin av kirine.

Li 14ê Îlonê kulnêl Noks wezîrê behriyê di nitqeke xwe de got ko ji niho û pê de vaporên ko ji Emêrîkayê çek û posatan dibin Ingilterê di bin himayeta stola emêrîkanî de bi rê ve herin. Û stola emêrîkanî heke bi rê ve rastî keştiyên dijmin bat ewê wan bigire an bin av bike.

Piştî van qeraran ji elmanan re divêt an çavên xwe li vaporên ko ji ingilîzan re ji Emêrîkê çek ditînin bigirin û berdin ew di ber pozê wan re biborin, an şerekî nû bidin ber çavên xwe û weke berê li wan vaporan xin. Li gora nitqa Rûzwelt heke elmanan li wan vaporan nexe jî nabe ko noqarên wan di navbera Islandê û Emêrîkê de bigerin. Ji ber ko Rûzwelt emir daye stola xwe ko di wê mintiqê de dirêjî vaporên elmanî bike. Ji vî emrê Rûzwelt dixuye ko Emêrike êdî daye ber çavên xwe ko tifinga xwe biteqîne. Heke Emêrîke kete şer bivê nevê barê Ingilterê wê siviktir bibe. Lê li gora tifaqa sêbendin beke Emêrîke şerê elmanan kir divêt Japon jî bikeve şer. Hingê şerê behrî wê bigehe behra pesifîkê jî û mesele wê mezin bibe.

HALÊ FRENSÊ — Wer dixuye ko Frense ne rahet e. Îşê Mereşal Pêten zehmet bûye. Piştî şerê ûris bolşêvikên frensiz li hikûmeta Pêten radibin. Li Parîsê û di hin derên Frensê ên din de li zabit û eskerên elmanan dixin. Berî çendekê li Laval û li hevalekî wî xistine. Brîna Laval sax bû, hevalê wî mir. Dibêjin ko elman ji frensizan hinekan ji benderên efrîqayê dixwaze. Xilase tiştek, tevlîheviyek di Frensê de heye, lê hi temamî ne xuya ye.

ÎŞÊ ECEM — Îşê ecem safî bûye. Şah Riza - Xanê pehlewî terka tac û textê xwe da û ji Tehranê rabû. Kurê wî Şahpûr ket şûna bavê xwe û bûye Şahê Ecem. Ji ber ko eceman der heqê anînciha şertên sondxwariyan de ne dilrast bûn ûris û ingilîzan ketine Tehranê jî. Ecem li ser pêşnihada

## XEBATA HAWARÊ

Alî Bedir-Xan Celadet beg ji bo te pir silav
Dir ji zarê te dibare tê de bihna sed gulav
Lew dîvê esra felaket. tarîxa zar û ziman
Edebî şihr û kinayet lavij û lûj dan hilav
Her bijîn pisporê Kurdan tevî Kurdistan bijîn
Da ko tîpên me di çapxanê rijandin zêre av
Çax û hêwana me îro maye bê deng û xebat
Xew li çavê me dibare xem li ser me sed xûnav
Minet û xişma vejale mij li sîpan girtiye
Em di bin da mane jarî hêlîna derdan xunav
Em li bin lingê nejadan bûne gêrik her mirî
Zar û pejmirde dinalin her bi dîli lavelav
Tarîxa cihan dixwaze serxwebûn û nav û deng
Yezdanê navdar ko daye dest û ling û çav û gav
Ma dizanî ayê jaran nîne jê re pirsiyar
Qanûnê cihan seranser bend û serbê wan dirav
Ger nexwînin em nebînin xwîn û cenga serxwebûn
Yan ne çapek nih nebînin dê bimînin kal û xwav
Ma dijîn lawanî Kurdî ger ne ewrê reş bere
Hêj bibare dil diyar be wê bibînin roj û tav
Firset û zeman nizane dûr û nêzîk çax û beng
Ma ne Hişyar tu dixwazî vî zemanî çax û gav.

HIŞYAR

ûris û ingilîzan sefaretên elmanî, telyanî, birxari, romanî û mecerî girtine, û elmanên ko bi destên wan ketine teslîmî ûris û ingilîzan kirine. Wer dixuye ko ûris û ingilîzan nîzama Ecemistanê wê biguhêrînin.

ŞERÊ ÛRIS — Herwekî me di hejmara 32an de goti bû ûrisan şerê xwe xweş kiriye û xwe li ber elmanan digire. Lê wer dixuye ko elman gelek zorê didin ûrisan û wan pir têşînin. Şerine xwînriz di navberą wan de çêdibin. Ûris, nemaze, di eniya Smolenskê de rabûne berhûciman jî. Û li gora danezanên Moskoyê ûrisan di vê eniyê de elmanan 26 kîlometir bi şûn de jî vegerandine. Lê ji milê din ûrisan daye zanîn ko elmanan, di bakurê Kiyêvê de, ketine bajarê Çernigovê. Di eniya nîvro de yanî Okranyayê de elman li ava Dinyeper derbas bûne û ketine wî milê avê. Bi vî awayî kiyêv û nîvgirava Kirim ketine bin talûkeyê. Wer dixuye ko elmanan dikin riya Kirimê bigirin û ordiwa ûris ya ko li Kirimê ye ji welêt qut bikin.

Odesa weke xwe di bin mihaserê de ye. Elman hêj ne ketin ê. Li Lênîngradê şerekî dojehîn çêdibe. Berfa pêşîn dest bi ketinê kiriye. Heye ko ew dojeh jê hinek honek bûye.

Di welatê ûrîs de cihê ko jê re Volge dibêjin, 400000 elman hebûn. Ew elman ji wextê Keterînê ve di wî welatî de ne. Ûrisan ji tirsa ko ew elman tiştekî bikin, rabûn ew ajotine Sîbêryayê.

Iigilîz û emêrîkanî dibêjin emê bi her awayî arîkariya ûrisan bikin û em nahêlin ko ûris bişkên. Wer dixuye ko hin belafirên ingilîzî çûne Rûsyê û di eniya Lênîngradê de şerê elmanan dikin.

Herwekî me berê jî goti bû çekên ûris zehf û ecêb in. Welê dixuye ko hin tangê wan bi 250 ton mezin in.

Ji tevgera ordiwa elmanî wer dixuye ko elman di Okranyayê de tiştekî nû pêk ditînin, û dikin li ûrisan derbeke xurt bidin.

## BINGEHÊN GRAMÊRA KURDMANCÎ

BI NAVÊ YEZDANÊ PAK Ê DILOVAN Û MIHIRVAN

— 7 —

67 — EKÎ, EKE, INE.

EKÎ — Ji bo yekejmara zayendê nêr.

EKE — Ji bo yekejmara zayendê mê

INE — Ji bo gelejmara her du zayendan

Ev veqetandek dikevin paşiya wan navdêrên ko bireserek daye pey wan.

| | |
|---|---|
| Hespekî delal hat. | Hespine delal hatin. |
| Mehîneke delal hat. | Mehinine delal hatin. |
| Heşpekî Soro hat. | Hespine Soro hatin. |
| Mehîneke Soro hat. | Mehînine Soro hatin. |

Gelek eşkere ye ko gava em « hespekî delal » an « hespekî Soro » dibêjin, ev gotin ne bi mana « hespê delal » û « hespê Soro » ye. Em li misala « hespekî Soro » hûr bibin. Di gotina « hespê Soro » de qala hespekî welê dikin ko bi her awayî bi me nas e. Lê gava « hespekî Soro » dibêjin ev hesp bi me bi temamî ne nas e. Bi tenê em dizanin ko ew, hespek ji hespên Soro ye. Lê ew kijan hespê Soro ye; em pê nizanin.

68 — Veqetandekên nebinavkirî di pêşiya rengdêran de : Veqetandekên nebinavkirî jî wek ên binavkirî, carina dikevin pêşiya rengdêran. Hingê şiklên wan ev e : î, e, en.

Hespekî min î qenc hebû. Heşpine min en qenc hebûn. Mehîneke min e qenc hebû. Mehînine min en qenc hebûn.

Çend mîsalên din :

Ez çûme derên çeman, çem en ser in,
Zoranên bavê te bilind in, berf û baran lê dibarin.
Kurê Haco ê mezin î xwenda. Hespekî min î sor hebû.

Li gora nûçeyên paşîn emîral Rîder serfermandarê stola elmanî batiye Birxaristanê û elman di behra reş, di benderên birxarî de stolekê saz dikin. Ji bona ko ji wan wargehan û di riya behrê re, di Behra - Reş de dirêjî peravên ûris bikin. Dibêjin ko birxaran ji talyanan heft torpiyor kirîne. Ji ber ko Birxaristan dewleteke bêteref e, divêt cenkeştiyên wê di Çeneqelê re derbas bibin. Heke ev nûçe rast e, ev torpiyor bivê nevê ji bo elmanan in. Lê Birxaristan herçend ne keti be jî şer, nikare yekcar bêteref bête hesibandin. Ji lewre gelo tirk ji vî îşî re wê çi bibêjin?

Herwekî xwendevanên me dizanin tirk ji mêj ve bi ingilîzan re girêdayî ye. Lê vê paşiyê bi elmanan re jî peymaneke nelihevxistinê imza kiriye. Kurdmanc dibêjin: bi gurî goşt dixwe, bi şivên şînê dikişînê. Bextê romî ye, ma kes pê dizane. . . .

Şam: 16 Îlon 1941 NÊREVAN

Şanek — Gava çend navdêr bi bireserekî ve girêdayî ne û ew hemî ji yek mêjerê ne, ji yek zayendî nebin jî, mirov dikare wan navdêran bi yek veqetandekê bi biresrî ve girêbide. Veqetandek ji zayendê navdêra paşîn tête bijartin, yanî heke navdêra paşîn nêr e, veqetandek nêr û heke ew mê ye, weqetandek jî mê ye. Herwekî li şûna ko mirov bibêje: « Meta min û mamê min hatine » « pismamê min û dotmama min hatine» Mirov dikare bibêje: « Met û mamê min hatine ». « Pismam û domama min hatine ».

Çend mîsalên din: Hesp û mehîna Lêzgîn. Keç û kurekî min bene. Mih û bizinine zozanan.

69 — Gava ji yekê bêtir bireser bi navdêrekê ve dibin û ew bireser tev de navdêr û pey hev bireserên hev in hingê her yekî wan li gora mêjer û zayendê xwe veqetandekeke cihê dibe :

Ava me şêrîn e.
Ava kaniya me şêrîn e.
Ava kanike me şêrîn e.
Ava kanîne me şêrîn e.
Ava kaniya gundê me şêrîn e.
Ava kanîke gundê me şêrîn e.
Ava kanîne gundê me şêrîn e.
Ava kanike gundeki me şêrîn e.
Ava kaniyên gundê me şêrîn e.
Ava kaniya gundê ciranê me şêrîn e.
Ava kanîke gundê cîranê me şêrîn e.
Ava kaniyên me şêrîn e.
Avên kaniyên me şêrîn in.

Lê heke di nav wan bireseran de rengdêrek heye, hingê û ji ber ko rengdêr ji bêjeyên neguhtêrbar e, û ji lewre tu veqetandek pê ve nabe, veqetandeka navdêra ko rengdêr bireserê wê ye dikeve pêşiya wê rengdêrê û wê bi navdêra xwe ve girêdide. Herwekî : gava em « kurê Haco ê mezin » dibêjin « ê » ya ko ketiye pêşiya rengdêra « mezin » ji « ê » ya ko bi « kur » ve bûye pê ve ne tu tişt e. Yani yê ko mezin e, kur e, û ne «Haco» ye. « Haco » biwa meê hingê bigota « Kurê Hacoyê mezin ». Heke me çêlî keçên Haco bikira hingê meê « a mezin » bigota, ji ber ko veqetandeka keçê « a » ye. « Keça Haco a mezin » Lê heke me mezinbûn bi aliyê Haco ve da hingê veqetendeka«Haço»pê ve dibe:«Keça Hacoyê mezin ». Çend mîsalen din : Tifinga min a dirêj. Hespekî min î xurt û beza hebû. Kitêba Hevind a peritî. Mehîna min a kumêt.

70 — Tewanga veqetandekê: Ji veqetandekên nebinavkirî « ek, ek, in » gava dikevin paşiya bêjeyên ko di qisetê de ne kirar lê bireser in, ew jî weke navdêran, têne tewandin û dibin: ekî, ekê, ina.

| | |
|---|---|
| Hespek hat. | Ez bespekî dibînim. |
| Hispin hâtin. | Ez hespina dibînim. |
| Mehînek hal. | Ez mehînekê dibînim. |
| Mehînin hatin. | Ez mehînina dibînim. |

Şanek — Ji qeydê der û di hin cihên Kurdistanê de veqetandeka « in » carina bi « î » û «ê » yê jî tête tewandin; herçend « in » veqetandakeke gelejmar e û parkîtên « î » û « ê » yekejmar in. Mesela : Li şûna « goştî bide min » û « avê bide min » « goştini bide min » û « avinê bide min » dibêjin.

71 — Gava navdêr bi dengdêrekê temam dibin, dema ko veqetandek bi wan ve dibin mirov dikare hin tipên ko navdêr û veqetandekê bi hev re girêdidin ji navê bêxe û wan kutebir bike. Herwekî li şûna ko mirov bibêje:

« Piyekî, xaniyekî, çirayekê, maseyekê, coyekê, xwesûyekê, kursiyek, xaniyine, maseya min ».

Dikare bibêje : « Pêkî, yanîkî, çirakê, masekê, cokê, xwesûkê, kursik, xanîne, masa min ».

( dûmahik heye ) C. A. BEDIR-XAN

## HEYRAN [1]

Heyran! îşev meçe, li hire be,
Wê bê pêşiya heyranê min nijda şemer
[ û ereb e,
Wê te bikujin, xelk ê bêjin, Eyşmelana
[ reben biye serê loman û sebeba
Li ser serê min hat heyran, mehvanê
[ paşmexribê.

Heyran Xwedê xerab bikê Keşanê !
Xaniyê Mîr Ehmedê min raserî kolanê
Minê divê ezê şeva nîvê şevê herim te-
[ wafa xal û nîşanê gerdenê
Devê min şemiti, keti bî ser lefika ki-
[tana Eyşmelanê.

Heyran tu î xirab î,
Tu li derê mala babê min rûdinî,
[ qet ranabî;
Ti we bikî, ezê bêjim bab û brayên xwe
Ev sêwiyê heyrana ji min venabê.

Heyran digo keçikê ez xirab im,
Ez li ber derê mala babê te rûdinim,
[ qet ranabim.
Ti ne bêjî bab û brayên xwe
Ti bêjî xunkarê dînê islamê ez ji te venabim

[1] Ev heyraneke Botan e; sarekê jêliyan bi xwe ji me re gotiye.

# Kitêbxana Hawarê

*Hejmar:*

1 — Rêzana Elfabiya Kurdî C. A. Bedir-Xan.
2 — Rupelnine Elfabê C. A. Bedir-Xan.
3 — Dilê Kurên Min Dr. K. A. Bedir-Xan.
4 — Biyişa Pêxember. Bi Kurdiya dumilî, bi dibaca C. A. Bedir-Xan
5 — Nivêjên Êzediyan bi dibaca C. A. Bedir-Xan
6 — Mektûb ji Mistefa Kemal paşê re
7 C. A. Bedir-Xan
1 — Mesela Kurdistanê Bazil Nikitîn
8 — Ji mesela Kurdistanê C. A. Bedir-Xan
9 — Elfabeya Kurdî Dr. K. A. Bedir-Xan
10— Xwendina Kurdî Dr. K. A. Bedir-Xan
11— Elfabeya min Dr. K. A. Bedir-Xan
12— Dersên Şerietê Dr. K. A. Bedir-Xan
13— Çarînên Xeyam Dr. K. A. Bedir-Xan
14— Proverbes Kurdes. Mesdhelokên Kurdî Lucy Paule Marguerite û Emîr. K. A. Bedir-Xan Paris - 1937
15— Le roi du Kurdistan. Qralê Kurdistanê. Emir K. A. Bedir-Xan û Adolphe de Falgerolle. Paris - 1937
6— Der Adler von Kurdistan. Eyloyê Kurdistanê. Prinz K. A Bedir-Xan û Herbert Örtel Berlin - 1937
17— Der Schnee Des Lichtes. Berfa Ronahiyê Şihrên Kurdî Prinz. K. A. Bedir-Xan û Dr. Curt Wunderlich Berlin - 1937

# Kirîyariya Hawarê

| | | | |
|---|---|---|---|
| Salî | 500 | Qirûşên | Sûrî |
| Şeşmehî | 300 | Qirûşên | Sûrî |
| Sêmehî | 200 | Qirûşên | Sûrî |

Xwedî û gerînendeyê berpirsiyar: Mîr Celadet Alî Bedir-Xan. Şam—Sûriye
Directeur Propriétaire: Emir Djéladet Aali Bedir-Khan. Damas—Syrie

SAL 9
HEJMAR 34

ÇARŞEMB
15 ÇIRIYA-PÊŞÎN 1941

ANNEE 9
NUMERO 34

MERCREDI
15 OCTOBRE 1941

# HAWAR

## KOVARA KURDÎ ✶ REVUE KURDE

TÊXISTIYÊN VÊHEJMARÊ



ŞAM—1941
ÇAPXANA SEBATÊ

SAL 9
HEJMAR 34
ÇARŞEMB
15ÇIRIYA-PÊŞÎN 1941

# HAWAR

ANNEE 9
NUMERO 34
MERCREDI
15 OCTOBRE 1941

KOVARA KURDÎ ✶ REVUE KURDE

## TEFSÎRA QURANÊ

187 - Di şevên remezanê de nîzikbûna we li jinên we, ji we re helal e. Ew cilên we ne û hon jî cilê wan in. Xwedê seh kiriye ko hon di şevên remezanê de nîzikî jinên xwe dibûn û we pê nefsa xwe dixapand; lê hon êdî tobedar bûn û Xwedê tobe da we û di gunehên we bihurt.

Êdî hon dikarin, di şevên remezanê de li cem jinên xwe bimînin, hêvidarên kerem û teqdîra Xuda bibin û fêkiya qederên xwe jê bixwazin.

Heta dema sagurê ko tê de reşiya şevê ji ronahiya rojê ji hev dibe, bixwin û vexwin lê ji wê demê û wir da heta rojavayî rojiya xwe bigirin, dest ji xwarin û vexwarinê berdin û gava hon di mizgeftan de, di îtikafê de ne, nîzîkî jinên xwe mebin.

Ev tixwîbên emrên Xudê ne, nîzîkî wan ne bin. Bi vî awayî Xuda emr û fermanên xwe pêş xelkê dike da ko ew pê bîrewer bin, ji Xwedê bitirsin û dest ji xirabiyê bikişînin.

188 - Malê hev û du bê heq mestînin, talanê xelkê mebin, di neheqiyê de û di xwarina malê xelkê û anîna talanê di wan de ji bo piştxurtiya xwe ji hakiman re bertîlan medin.

Hon dizanin, ew zilm e. Laneta Xwedê li zaliman e. Zalim rûreş in, mîna kafira ne. Kafir dojehketî ne û tê de her dimînin.

Ji te bête pirs kirin :

189 - Mehên nû ji çire ne?.. Bêje: Mehên nû demên rojiyê, fitarê hecê û ayînên di vê, çaxa dayîna deynan û mehikê pêş xelkê dikin. Ji par re derbasî hundirê malan mebin, ev tiştekî kirêt e û bê xêr e, lêbelê di deriyan re bikevin xaniyan, guhdariya emrên Xwedê bikin, jê bitirsin heta ko kerema Xwedê bigehe we.

190 - Yên ko qesda kuştina we dikin, di riya Xwedê de wan bikujin, lê yê ewil hon destê xwe dirêjî wan mekin, Xuda ji tadakeran hez nake.

191 - Hon li kû derê ji rastî wan dijminên dînên xwe tên dest bi kuştina wan bikin û herwekî wan hon ji welatê we derêxistin wisa jî hon wan ji welatê wan derênin. Ji ber ko fitne ji kuştinê xirabtir e. Lê di mescida - Heramê de dest bi kuştina wan me kin, meger wan bi xwe destdirêjiya we kir; ko wan wisa kir wan bikujin, cezayê kafiran wilo dibe.

192 - Heke wan dest ji kufr û kuştinê kişand .... Xuda efîw û tobê dide; Xwedê mezin û piyar e.

193 - Heta qelandina fitne û kufrê di kuştina wan de pê de herin û dev ji wan bermedin heta hingê ko bête seh kirin ko taet û ibadet bi tenê ji Xuda re ye. Lê yên ko dest ji kufrê dikişînin û poşman dibin, ji wan re dijminîtî naye kirin. Xuda neyarê zaliman e.

194 - Herwekî par di meha Zil-qadê de wan riya Mekê ji we girt û bextê xwe li ser ewleyiya wê meha giran û cihê miqedes şkênand, wiha hon jî di wê mehê de herin qezayê Emrê û dest bi kuştina wan bikin. Gava hin bextê xwe li ser ewleyiya cihekî an wextekî miqedes xira dikin ji wan re qisas divê.

Bi her çi awayî yek ji we re xirabiyê dike bi wî awayî lê vegerînin.

Ji Xuda bitirsin û sinorên heqê xwe bizanin û dîsa bizanin ko Xwedê bi ciwanmerdan re ye.

195 - Malê xwe di riya Xwedê de bi xweşdilî bidin û bi çavtengiyê, xwe bi xwe mavêjine tehlukê, camêr û destvekirî bin.

Xuda ji mirovên ciwanmêr û destvekirî hez dike.

196 - Ko we dest bi Hec û Emrê kir, ji bo Xwedê ferz û sinet û ayînên di wan pêk bînin û biqedînin.

Heke seba tengasiyekê, weke nesaxî an girtina rê (şer û kuştinê) nikarin bigehin Hecê, ji we re şerjêkirina deveyekê, çêlekekê an pezeki dibe wacib.

Qurbana we divê di wî cihî de ko tengasî bi ser we de hat, hêj bi xêrtir di Heramê de bê şerjêkirin; û bêrî ko qurbana we bigehe wê derê pora xwe kur mekin, yê ko seba nesaxiyekê an nexweşiya serî bivê nevê, pora xwe diqusîne, jê re fidyeyek wacib e.

Hikma fidyê ev e: Sê roj girtina rojiyê an ji şes belengazan re dana şeş mid genim an şerjêkirina pezekî.

Heke tengasî namîne, û her çend jî dema Hecê bihuriye, yê ko digehe Emrê û heta ko sala nû û dema Heçê bê bi nîmeta Emrê dibe nîzîkî xeyra Xwedê, jê re şerjêkirina deveyekê, çêlekê an pezekî dibe wacib.

Heke qurbanek nakeve destê wî, divê sê roja rojiyê bigire û di vegera xwe de jî divê heft rojên din rojî bigire.

Ev hikmên Xwedê, ne ji bo xelkên Mekê û xelkên dora wê ne.

Ji Xuda bitirsin û bizanin ko Xwedê bi ezabekî giran diezibîne.

197 - Mehên Hecê mehên hejmartî ne. (Şewal, Zil-Qade û neh rojên Zil-Hicê ên pêşîn) in.

Yê ko dest bi pêkanîna ferza Hecê kiriye, bila ew di Hecê de nîzîkî jina xwe nebe, dest ji fisq û xirabiyê bikişîne, bi heval, xadim û xulamên xwe re pev neçe.

Çiqas ji destê wî tê bila qenciyê bike. Xuda bi vê qenciyê dizane. Ji bona Hecê bi peran û zad debara xwe bikin, lê zadê xweştir tobe dia û dilrastî ye.

Gelî mirovên bîrewer..... Ji min bitirsin.

198 - Dema Hecê de heke hon, bi kirîn û firotinê, bi ticaretê rizqê xwe ji Xudayê xwe dixwazin, ev ji we re ne guneh e. Gava hon ji Erefatê vedigerin, di cihê Meşeril-Heramê de navê Xwedê bînin bîra xwe, jê şikirdar û razî bin, hon nezan bûn ew ji kerema xwe riya Hecê a rast da we.

199 - Paşê weke xelkên din, hon jî ji Erefatê vegerin û werin û tobedarên Xudayê xwe bibin. Xwedê efiw û loban dide, Xuda piyar e.

200 - Gava we ayînên Hecê pêk anîn û qedandin, herwekî mirov bav û bapîrê xwe tîne bira xwe welê jî, an hêj bêtir honê navê Xwedê ji dil bînin bîra xwe û bi mezinahiya wî bîrewer bin.

Yên ko ji Xudayên xwe bi tenê hêviya malên dinyayê û mezinahiya wê dikin, ew ji axiretê bê behr in.

201 - Lê yên ji wan ko dibêjin: Xudanê me, ji kerema xwe di dinyayê de xweşî û qenciyê ji me re li hev bîne û di axiretê de me bigihîne kerema xwe û ji me agirê dojehê dûr bike...

202 - Ew ji hêvî û qenciyên xwe xudanbehr in. Xwedê di cezadanê û keremkariyê de bi lez û bez e.

203 - Di rojên hejmartî de (ango di cejna qurbanê de ji sibeha roja erefê heta piştnîvroyê roja cejnê a sisê) Xudayê xwe bînin bîra xwe û bi navê wî zikrê bikin. (Awayê zikir ev e: Ê mezintir Xuda ye, ê mezintir Xuda ye, ji Xuda pê ve tu Xuda nîne, ê mezintir Xuda ye, ê mezintir Xuda ye, pesn ji Xuda re ye.)

Yê ko vê zikrê bi lez di nêv du an bi giranî di nav sê rojan de dike jê re tu guneh nîne.

---

Ji bona Telsîra Quranê K. K. û li hejmaêrn 27, 28, 29, 30, 31, 32 û 33 an fedkirin.

# HEDÎSÊN

## CENABÊ PÊXEMBER

REHMET Û SILAVA XWEDÊ LÊ BE

316 - Ji sedeqeyên qenc yek ji ew e ko mirov hînî tiştekî çak bibe û miroveki dî hînî wî tiştî bike.

317 - Keda çêtir ji dan û standina pak û ji keda xebata destan û xwêhdana eniyan tê.

318 - Bawermendên çêtir ew in ko exlaqê wan baş e.

319 - Bawermendên çêtir ew in ko kirîn û firotina xwe bi camêriyê dikin, deynê xwe bê zehmet didin û xwediyê deynê xwe aciz nakin û deyndarên xwe na şidînin û na êşinin.

320 - Heçî eqilmend in serdestê hevalê xwe dibin.

321 - Pir merin meyin mala dewlemendan.

322 - Pir mebêjin li qisûra min me nêre hênê dawî derewan bikin.

323 - Li qisûra comerda me nêrin ko piyê wan şemitî, Xwedê wan digire û bernade ko bikevin.

324 - Gunehên mezintir ew in: mişrikî, kuştina xelkê bê rê, asê bûna dê û bava; dana şehdetîya zor.

325 - Di roja piştdawiyê de piraniya xelkê ji ber gotinên bêrê û beredayî wê bêne êşandin.

326 - Dev û diranê xwe her paqij bigirin.

327 - Bila mirina we tim di bîra we de be, dilê belengaza pê rahet dibe û pozbilind jê ibretê digirin û eqilmend dibin.

328 - Mirovên mezintir ew in ko ji Xwedê tirsiyar in.

329 - Qedrê nanê xwe bigirin.

330 - Bawermendê çêtir ew e ko exlaqê wî baş e û xeyra jina xwe dixwaze.

331 - Jina bi zar û zêç ji jinikeke spehî lê bê zaro çêtir e.

332 - Qenciyê berî ewilî ji diya xwe re bike, paşî dîsa ji diya xwe re bike, cara sisiya dîsa ji diya xwe re bike, di pişt re ji bavê xwe re û piştre li gora nîzikahiya wan ji mirovên di xwe re bike.

333 - Xwedê ji sê evdên xwe hez dike: hakimê adil, mirovê ko ibadeta wî dike û yê ko kesî na ke hevberê wî.

Xwedê ji sê evdên xwe dixeyide: mirovê durû ko paşgotiniya xelkê dike, yê ko bê rê ji xelkê pir dipirse û yê ko ziaker e.

334 - Xwedê dibêje: gava du mirov bi dilekî pak şirîkê hev in ez bi wan re me, lê heke dilê xwe li hev xira dikin ji wan digerim.

335 - Di rojà piştdawiyê de Xwedê ji evdê xwe re dibêje: ez ne sax ketim, te serek li min ne da; ez birçî bûm te xwarin ne da min, ez ketim tengiyê te li min ne pirsî; evdê wî jê re dibêje: Xudayê min, ma min çawan dikarî ez bizanim ko ew tişt hatine serê te. Xwedê lê vedigerine û dibêjê: gava car û cîranê te nesax ketin tu ne çûyi serdana wan, ko birçî man te li wan ne nêrî, ko ketin tengiyê te arîkariya wan ne kir, ma ev ji ne mîna wî ye.

336 - Bi serê bav û brayê xwe sund me xwin.

337 - Xwedê emrî we dike, divê hon qedrê jina bigirin, ew dê û dot û metên we ne; ma hon na binin file ji xwe re jinekê mehr dikin û heta mirinê jê na gerin.

338 - Xwedê spehî ye û hejî her tiştê spehî dike.

339 - Pêşîgera xaniyên xwe paqij bikin, mîna cuhiya rêvin me bin.

340 - Xwedê di gunehên xelkê dibore û ji mirovên ko di sûçên xelkê diborin hez dike.

341 - Xwedê bi deyndara re ye, bi wî şertê ko deyndar pereyê xwe bê rê zia me kin.

342 - Xwedê li rû û malê di we na nêre, lêbelê li dil û emelê we dinêre.

343 - Xwedê ji arikarê hewcedaran hez dike.

344 - Xwedê di her tiştî de ji xwediyê sebrê hez dike.

345 - Xwedê ji mirovên ko bawişka tînin hez na ke.

346 - Xwedê ji mirovên bi vên û xeyret hez dike.

347 - Heke jin û mêr li hev dinêrin, dilê wan pev re rast e û hejî hev dikin Xwedê jî li wan dinêre, li wan tê rehmê û li gora dilê wan dide wan. Heke jin û mêr destê hev digirin û pê şa dibin Xwedê gunehê wan ji destê wan diweşîne û ew ji gunehên xwe pak dibin.

348 - Bi exlaqekî baş mirov digehe dereca mirovên ko hero rojiyê digirin û bi şev ibadeta Xwedê dikin.

349 - Bawermend ew e ko bi şûr û bi gotina xwe cihadê dike, rastiyê dibêje.

350 - Li cem nesaxa pir rûmênin û bi dengekî bilind ma xêvin.

451 - Mirovê ko destek cil dide belengazekî rût di axiretê de Xwedê lê tê rehmê.

352 - Bizane, çawan divê hevalê xwe bibijêrî.

# JÊLIYAN

Di hejmara Hawarê a 29an de ( rûpel : 10 ) me hin awayên xebalê şanî xortan da û goti bû ko xortên me ji folklorê re bixetin û herçî starn, çîrok, çîrçîrok, medhelok. û mamik in bidin hev û belav bikin. Em dikin iro di vî warî de rêke din jî şanî wan bidin. Eşîrên Kurdisianê û her texlît adet û rêzikên wan. Ma kes heye ko eşîra xwe nas neke. Nemaze heke çend peyayên eşîrekê gihane hev ewê bikarin li ser wê eşîrê tiştekî tekûz çêbikin. Ev nivîşarên ha ko gihane hev ewê bikarin tarîx cexrefye û jîna Kurdistanê a civakî bînin pê.

Ji xwe Osman Sebrî di vê babetê de bendek belav kiriye. Çiyayê Sasonê ( Hawar : 27, rûpel : 8 ). Osman Sebrî li eşîra xwe bi xwe hûr biwa bivê nevê dikari bû tiştekî jê tekûztir bîne wicûdê.

Ezê îro ji eşîrên Botan qala jêliyan bikim. Ez dizanim ko di vê dendê de gelek kêmahî wê hebin û min dikari bû hinekê wan bidim alî. Lê dema nivîsandina vê bendê de yên ko eşira jêliyan ji min re gotine ne bi min re ne ko ez ji wan bipirsim. Lê ev bend dikare bi kêrî hinan bèt. Yên ko vê bendê bixwînin heke li ser eşîrine din tiştek nivîsandin, nivîsara wan bivê nevê ji ya min wê tekûztir bibe.

Eşîra jêliyan, eşîrek ji eşîrên Botan e. Eşîrên Botan sih, sih û pênc eşîr in û bi awayê jêrîn lêk vedibin : Koçer û dêmanî. Koçer jî du bir in : Çoxsor û Şilit. Çoxsor : Mîran. Alikan, Dudêran, Dawûdiyan, Soran, Garisan, Gergerî. Şilit : Batûyan. Teyan, Xêrkan, Kiçan, Mûsereşan. Eşîrên deşta Slopî : Hewêrî, Zêwkî, Spêrtî, Reşikan. Dêmanî : di vî milê avê de : Meman, Hesinan, ( jêrîn û jorin ) Ebasan, Aliyan. Di wî milê avê de : Berwarî, Erih, Garisan ( Koçerên wan jî hene ) Welat - Kelhok, Welat - Kêver, Welat - Kilîs, Şûvan, Jêliyan, Dêrşew, Hacî - Aliyan, Keran, Harûnan, Slopiyan. Hacî-Bêra : Şernex, Goyan. Eşîrên Botan tev de silîv in.

Eşîra jêliyan sereké wan Resûl axa bi xwe ji min re gotiye. Brayê wî Egid axa û kurmamê wî Sadiq axa jî hazir bûn û arikariya wî dikirin. Gava li ser tiştekî bi hev ne dikirin Resûl axa simbêlên xwe ên têrmû ba dida, berê xwe dida min û digot : « Ma ezbenî, ev ji kû dizanin » û bi vî awayî zora wan dibir. Te digot qey bira û kurmamê wî ne jêlî, lê berazî an şikakî ne.

Di vê bendê de min zarê Resûl axa, di daîra imkanê de, weke xwe hiştiye û ne guhartiye. Ji hin awayên gotinê pê ve; yên ko xwesert xeberdanê ne û nayin qelemê.

Mîn notên eşira jêliyan di sala 1932an de li Hesîçê cem xwe nivîsandi bûn.

## CEXREFYA TEBÎHÎ

### TIXÛB, ÇIYA, ÇEM, DEŞT, NEWAL

TIXÛB — Min xerîteke cihê jêliyan çêkiri bû û tê de tixûbên wî bi her kitkitên wî şanî da bû. Di dema nivîsandina vê bendê de min xerîta xwe peyda ne kir. Bivê nevê ev kemahîke mezin e. Lê min nikari bû ez wê bi aliki bidim. Digel vê hindê li gora ko ez dizanim eşira jêliyan bi eşirên jêrîn dorgirtî ye : Li baku : Şûvan; li nîvro : Hacî Aliyan, li rohelat : Dêrşew, li rova : Keran.

ÇIYA — Cihê eşira jêliyan hin dest, hin çiya ye; hin zozan, hin jî germiyan e. Cihê germiyan ji cihê zozan zehftir e. Tê de şeş çiyayên bingehîn hene. Çiyayên jêliyan ji bakûr ber bi nîvro ev in : Çiyayê Kehniyan, Çiyayê Kosiyan, Çiyayê Pehnik, Çiyayê Reş, Banê Azîzan, Çiyayê Findikê.

Çiyayê Kehniyan — Ji Çiravê vediqete, dikeve cihê jêliyan û ber bi rojavê diçe. Di vî çiyayî de çend deriyên mezin hene. Deriyê Kêloste, Deriyê Beristanê, Deriyê Dizî, di neqeba wan de derîki din heye, jê re Keleha Mîr dibêjn. Li vê derê şawine asê hene ko dewar tê re nikarin herin. Ji wan re Şawa Bihok, û Şawa Selpene dibêjin.

Di nîvroyê Keleha Mîr de Kehniya Botê û Deriyê Dehlê hene. Birek ji vî çiyayî heye jê re Başûş dibêjin. Di Başûşê de jî Bênikil, Kehniya Beytik û Ziyareta Geliyê Zêwê û Dola Eynê hene. Di Kevera Dêrawotê de jî du derî hene : Deriyê Şkêrê, Deriyê Asê.

Piştî Dêwikê çiya dibe zinî. Zîniyê Basan. û di pey wî re Aûr e, jorîn û jêrîn. Di van zîniyan de jî çend derî hene : Deriyê Gawat, Kevera Şêx Emer, Deriyê Sûsikê, Keleha Molit.

Çiyayê Kosiyan — Ev çiya jî ji Çiravê têt. Hetanî Emtê jê re çiyayê filehan dibêjin. Jê wê ve êdî dibe Çiyayê Kosiyan. Deriyê Gozê di birê filehan deriye. Warê vî çiyayî guher û kehnî ne. Çend derî lê hene: Deriyê Kaşê, Bîrên Lodiyan, Dola Qirikan, Keleha Dêrdê, Dola kosiyan. Ev dol tejî rez e. Sotek, hewalek li vê derê heye wek, Qernasisê. Çiyayê Kosiyan di Girikê de xelas dibe û qûna wî dide deşta Mişarê.

Di vî çiyayî de cihek heye dibêjin Mehînan. Ev der erdeke rast e; deviyên wê zehf in. Xelkê Girê Hisênî, Goveşil, Tanzih û Girdaran tê de cot dikin û erdê difetînin. Mehînan ji xwe koz e. Zivistanan koçer ten ê û lê disekinin.

Çiyayê Reş — Ji neqeba jêliyan dest pê dike û diçe miqabilî Çêlikê. Di vî çiyayî de jî hin der û derî hene. Deriyê Meydanê; ( li hire sarincek heye dibêjin Serinca Qubletê, serinceke kevn û mezin e, heye ko serinceke romanî ye ) Deriyê Diholan, Keleba Mela Hacî, Banê Behîvê, Kelehoşik, Deriyê Tilê, Tirba

Hesenê Zer, Hewdan, (tê de çend hewd hene) Bîra Gêmê, Birika Qubi, Bîra Hirçkeiyê, Çêlê Kunmêşê (di çêlê wî yanî zinarê wî de kunên mêşan hene) Deriyê Kêrxwer, Bîra Eyşikê, Kopê Kelihê, Meydana Elî Axa, Bîra Gewr, Bîra Reş, Bihto (cihê rez e) Bîra Çalavê, Bîra Nizarê Hêvin, Beriha Newiyan (bi xwe herih e, yanî şikeft e, sê aliyên wê girtî, alîkî wê berdayî) Kevera Çêlik (di miqabilî Çêlikê de ye. Ev kever cihê pezkovî ye, tê de çend gelî hene, nêçîrvan têne van geliyan) Gewra Kêrte, Geliyê Kehniyan, Gêra Nêwiyan, Geliyê Kûr, Geliyê Sor, Nekorte, Pêpelik (rêke asê ye) Mixalefe, Ziving, Şkêra Babîs (raserî ava Babis e, û cihê hirçan e).

Gera Xanî — Di qûntara Çiyayê Reş de ye. Xanek li vê derê heye; çend berih jî lê hene. Ava Babîs di vê derê de tête ser ava mezin Herçî spîndarên cihê jêliya e, ditinin hire, dikin tof û kelek û rêdikin Mûsil û Bexdayê. Sala dexil şirîn bê, ji Heskîfê û ji Bişêriyê, bi kelekan ceh û genim ditînin hire û difroşin.

Çiyayê Pehnik — Ji Goveşîlê dest pê dike û diçe Kifrê. Çiyakî bidar e, koza wî zehf xweş e. Berojê Mîr Ehmed koz e. Berê Mehînan jî, welê ye.

Banê Azizan — Banê Azizan ji riya Dara Stewrê dest pê dike, diçe Goyînan. Banê Azizan koza dudêran e, têtc heta Devtenûrê, raserî avê.

Çiyayê Findikê — Ev çiya ji nav acı Aliyan tête nivroyê Banê Azizan, raseri ava Seyidiyan. Ava Seyidiyan di nav Harûnan de ye. Çiyayê Findikê de jî çend deri hene: Kela Şêx Ozınan, Deriyê Gozê û Deriyê Ga.

DEŞT — Di cihê jêliyan de deşteke bi tenê heye: Deşta Mişarê. Belê yek e, lê belê herwekî dibêjin beranê çavbelek e. Deşta Mişarê deşteke gelek spehî û bi hatin e. Her du aliyên destê çiya ne. Qubletê deştê Çiyayê Reş e, paşqubletê wê ji çiyayê Kehniyan e. Drêjahiya deştê bi peyarî heşt saet e; ji neqeba jêliyan heta ava mezin. Frehiya wê, ji saetekê heta du saetan dajo.

ÇEM — Ava mezin di ber Çiyayê Reş re dibore. Jê pê ve di cihê jêliyan de hêjayî gotnê sê avên din hene: Royê Babîs, Royê Sor û Cowa Basixirê.

NEWAL — Di cihê jêliyan de Newala Kehniyê meşhûr e. Newaleke biheybet e, dora wê dar û devî û dehl in.

## CEXREFYA SIYASÎ

### TEŞKÎLATA EŞÎRA JÊLIYAN

Eşîra jêliyan li ser erd lêk vedibe. Di vî erdî de neh hevêrke yanî mintiqe hene. Di her hevêrkê de çend gund hene. Ev in hevêrkeyên jêliyan: Deşta Mişarê, Mendekeran, Lêfên Nêwiyan, Royê Jêliyan, Lodê, Navkura Basan, Mala jorîn, Mala jêrîn, Dêrûya Kurêşan.

— 1 —

### DEŞTA MIŞARÊ

Li Deşta Mişarê hevdeh gund hene:

Girê Hesênî — Gundeki bi dar û ber e. 60 mal tê de hene. Ava kehniya wê boş e. Gund di ser kehniyê re ye. Li dora kehniyê seyrangahek heye bi navê Deravê Miemberê. Hezar mêr dikarin di bin siha darên wê de rûnin. Darên wî spîndar, zergoz, çinar, tû, bizo, ben, mazû û berû ne. Hatina wan bi zehfî spîndar e. Çandiniyên wan ên avî penbû, kuncî û maşik in. Ên bejî jî ceh genim, nok, nîsk û kizin in. Ava kehniya gund di Qadê re dibore û dikeve rowê Babîs.

Li pişta gund xanîk heye jê re dibêjin Olî. Ev der di zemanê berê de asêgeha gund bû.

Qadê — Qadê dikeve navbera Girê Hesênî û Goveşîlê. Di cihê jêliyan de ji erdê wê behatir erd nîne. Lê gund bi xwe îro xirbe ye. Tê de avahiya dêr û medreseke kevin heye.. Medrese digel milkê xwe, di wextê mîr Nasir de guhastine Tanzê. Ava Girê Hesênî, wextê ji Deravê Miemberê xelas dibe dikeve ser milkê Qadê. Di erdê Qadê bi xwe de gelek kanî hene. Ava van kaniyan digehin hev û rowê Qadê ditînin pê; du aş li ber vî rowî digerin. Temamî milkê wê avî ye. Hatina wê, xelkê Goveşîl û Girê Hesêniyê dixwin. Ev der gundê Elî axayê qadê bû, maqûlekî jêliyan.

Zorava — Ev gund xelkê Goveşîlê ava kirine. Newala Kehniyê di qubletê gund de ye. Royê Babîs, ji gund, 20 deqîqe dûr dibore. Di nav gund de kehnî jî heye. Milkên wan ên avî li Qadê ne. Ên beji li destê jî hene. Di çiyayên dorê de jî milk û eqarên gund hene. Xaniyên wan şikeft in. Hin xelk rast bi rast di şikeftan de rûdinin. Hinan jî xaniyên xwe li devê şikeftan çêkirine. Di nav şikeftan de mezelên mezin hene ko tanî [1] kirine; hinek jî bi kuçan dîwar kirine û ji hev veqetandine.

[1] Tanî kirin ev e: Ji darên bî, berû, spîndar an mazûyan stûnine zirav ditinin, binên wan didin erdê, serên wan ji didin tehla şikeftê (xanî be girşan) û wan li rex hev disekinînin. Zelamekî hoste bi şivikan wan stûnan bi hev re dihûne û midekî dihêle heta ko hişk bibin. Û paşê tewek berî li rûyê wan didûn. Ev jî dibe texlîtek dîwar.

Rezên gund di qubletê gund de ne û jê du saet dûr in. Lê ji gund dixuyin. Du aşên gund hene. Pireke eqid di ser Babîs re ye, dibêjin ê Pira Haçikan.

Eynê — Gundekî şên e. 80 mal tê de hene. Kehnî deh deqîqe di ser gnnd re ye. Av ji kehniyê tête aşê gund, jê dikeve mala Şêxê kal ( şêxekî neqşibendî û şêxê jêliyan e ) Av ji mala şêx dertêt, diçe mizgeftê, û ji mizgeftê belav dibe ser baẍ û bîstanan. Çiyayê Kehniyan raserî gund e. Çiya hemî rez e; rezên wî ewçend qenc in ko heçko dilis weke kehnîkê jê diherike. Her texlît fêkî lê hene. Gund di nav daran de naxuye. Li pişta gund çiyayekî din heye dibêjin ê Kopê Mikriyan. Xanîyên gund bi zehfî olî [1] ne. Xanî hemî ji kevir in, ji kevirê kursî ne. Mizgefteke kevin lê heye, di hewşa wê de quleteynin hene. Mizgeft di zemanê berê de asêgeha gund bû.

Tilmîşar — Gundê Resûl aẍa bi xwe ye. 50 mal tê de hene. Di binê gund de çar kehnî hene. Aşek li ber ava wan digere. Erdê gund erdekî bi nan e, û erd hemî avî ne.

Sê deqîqe nizingî gund girek heye dibêjin ê Girê Yewnan [2] Li serê wî girî qesrek heye, qesreke kevin. Di nîvroyê gund, di Çiyayê reş de kelehek heye dibêjin ê Kelehoşik. Tev de eserên qedîmî ne.

Karitan — Îro xirbe ye. Berê 30 mal lê hebûn. Babis di ber re dibore. Di nav gund de kehnî jî heye.

Basixir — 20 mal tê de hene. Cowa Basixrê jê der dibe. Ji gundên jêliyan ji hemiyan bêtir, di vî gundî de birinc, penbû, kuncî, maşik diçînin. Dehlên gunb hene. Li pişta gund kelehek heye dibêjin ê Keleha Mela Hacî; asêgeha gund e.

Duav — 20 mal tê de hene. Ji kehniya gund pê ve avek ji Gamêş û Kerkujan têt ê. Ji xwe Babîs tê re dibore. Ji lewre ji vî gundî re gotine Duav.

Gamêşan — Gundekî kiçik e, 10 mal tê de hene. Milkê wî bêjî ye; lê derametê wan heye. Wek bacan, kulind, silk h. d. Kehnî di nav gund de ye.

Kerkujan — Ev jî gundekî 10 malîn e. Milkê wî bejî ye. Ji ceh û genim pê ve derametên gund hene.

Xalidî — 40 mal tê de hene. Kehniya gund heye. Cowa Girikê di nav gund re diçe. Cowa Basixirê di binê gund re diherike. Tirba Şêx Hisênê neqşibendî di vî gundî de ye. Şêx Xalid ev gund ava kiriye û navê wî daniye Xalidî.

Girik — Girik bi xwe xirbe ye. Şêx Xalid di qubletê Girikê de Xalidî ava kiriye. Berê 40 mal tê hebûn. Cowa Girikê di nav gund re dibore. Erdê wî bi zehfî avî ye. Aşek lê beye. Di biniya gund de pıreke mezin heye.

Di Girikê de zikakek heye dibêjin ê zikaka fitnê. Carekê siltan Mîrê Botan xwestiye Stenbolê. Rîspikî mîr heye, ew jî pê re çûye. Wekê gihan Stenbolê, rîspî gote mîr :

— Ezbenî, sibehê, ezê cilên te wergirim, bibim mîr. Tu jî cilên min wergire bibe rîspî. Ma em ji kû zanin siltan çire banî te kiriye. Ezê herim ba dewletê. Heke siltan ez kuştim, tu vegerî mal. Cihê Botan namîne bêserî. Tuê zarowên min jî bi xwedî bikî. Û heke siltan qencî bi min kir, ji xwe ew qencî ji te re ye.

Mîr tevdîra Rîspiyê xwe peciband. Sibehî rîspî cilên mîr wergirtin û çû ba dewletê. Mîr çend rojan li hêviyê ma, rîspî venegeriya. Mîr ji hinekan pirsî. Yekî gote mîr : « Tu here mal, mîr hêdî venagere ».

Mîr vegeriya mal û ji bona xizmeta rîsipiyê xwe ba kire kurê wî Elî û axaliya jêliyan da yê. Pênc şeş gundên qenc jî bi ax û av ve dan ê.

Elî aẍa bû aẍakî gelek zexim. Gundekî jêliyan heye navê wî Basixir e. Milkên gund zehf in. Lê erdê wî bejî bû. Mezinê gund çû ba Elî axa got : « Em bê av in, me divêt em cowekê bînin gundê xwe ». Av di Girikê re diborî. Hingê jî Girik di destên Axayê Dêrşew de bû. Elî aẍa got, herin avê bînin. Gundî çûn co kolan. Axayê Dêrşew seh kir, hawara xwe hilanî, hat Girikê. Elî axa jî hawara xwe bir û çû. Li Girikê her du eşîran li hev xist. Jêliyan berda dêrşewiyan. Nîzingî pêncî mêr ji wan kuştin. Dêrşewiyan laşên xwe hiştin û baz dan. Elî aya got, sikira cowa Basixirê bi kelaşên dêrşewiyan çêkin. Ji bona vî qasî navê vê zikakê bûye zikaka fitnê.

Di navbeyna jêliyan û dêrşewiyan de çend salan bû neyarî. Heta Elî axa nexweş ket, mezinên jêliyan hatin dorê. Elî axa gote wan : Wextê ez mirim, min bibin ziyareta Reda Darê û li wê derê veşêrin. Ez mirî bim jî dêrşewî newêrin di ser tirba min re biborîn û bêne hewe.

Tirba Elî axa îro jî li ber keviya rê kifş e. Ziyereta Reda Darê li ser riya Dêrşew e.

Meylanan — 20 mal tê de hene. Ava wan ji cowa miriyê ye. Di vî gundî de tûyên garisî zehf in.

Balokan — 40 mal tê de hene. Ava wan ji cowa mîriyê ye. Di çiyayê Beytikê de rezên gund hene.

Îsxasan — Ava wan ya vexwarinê ji birê ye. Ava aviyan ji cowa mîriyê ye. Fêkiyên wan kêm in. Xaniyên wan navko ne. 30 mal tê de hene.

---

[1] Di cihên Botan de xanî li gora tebeqên xwe bi nav dibin. Navko-yeklebeq. Olî-dutebeq. Qesir-sêtebeq.

[2] Gelo navê yewnan bi çi awayê lê bûye. Heye ko ji wextê Ksênefon. Li hejmara : 32, rûpel 4 fedkirin. Kardûx û welatê kardûxan.

Zovaniyan — 40 mal tê de hene. Ava Eynê têle vî gundî û di çandiniyên vi gundi de winda dibe. Dehlên gund zehf in û bi merês in. Rezên wan di Çiyayê Başûşê de ne. Xelkê gund bi zehfî şêxzade ne.

## — 2 —

## MENDEKERAN

Gundên Mendekeran jî li destê ne, dikevin rojavayê deştê. Li Mendekaran neh gund hene:

Goveşil — Cihê gund teht e. Dora gund gir û bistî ne; cihê gund nivz e; dibe wek gêrekê. Berê 100 mal tê de hebûn. Ji roja ko gund şewitye, xelk venegeryan ê. Hin çûne erdê Qadê; hinên din Zorava ji nû ve ava kirine û ketin ê.

Girxetib — Cihê gund bilind e, li ser gireki ye, gireki bi devî, deviyên hûr. Royê Babîs di bin gund re dihore. Ev her sê gund yanî Girxetib, Bêder û Gundikê Elkan hema bi hev ve ne. Avahiyên gund qederê 20 mal in.

Bêdar — Gundeki têr kehni û têr hatin e, 70 mal tê de hene. Spîndarên wê zehf in. Dehl û rezên wê jî hene.

Gundikê Elkan — Gundeki kiçik e. 15 mal tê de hene. Ava Babîs di ber gund re dibore, kehniya gund jî heye.

Diyê — Xirbe ye. Berê 50 mal tê de hebûn. Gundekî bi av û spîndar e.

Gundikê Sêvan — Gundekî xirbe ye. Berê 20 mal tê de hebûn. Cowa Sêvan di gund re diçe. Babis jî di nivroyê wî re diherike. Kehniya wî jî heye.

Dibêjin ko zilamek hebû, navê wî Resûlê Qêsim bû. Di wextê xwe de mêrekî qenc bû. Di çiyayê Zovaniyan, di Başûsê de cibek heye, dibêjin ê Bênîkil. Resûlê Qêsim, li wê derê xaniyek çêkiri bû û dehyeka rezên çiyê dixwar. Mendekeran pê nikari bû. Ji ber ko pismamên wî jî zehf bûn. Resûl ji ber timahiyê, rabû û digel brayê xwe berda pismamên xwe. Hejdeh mêr ji wan kuştin. Wextê bi tenê ma mendekeran hatin ê, ew û brayê wî kuştin.

Xirabgewran — 10 mal tê de hene. Ro di ber re dibore Kehni ji heye. Milkê wan avî ye, lê dehl û rezên wan ninin.

Gundikê Îso — Xirbe ye. Berê 10 mal tê hebûn. Kehnî heye. Babîs di nivroyê wî re dibore. Avî û dêm e. Di rojavayê gund de mesîlek heye: Mesîla ava şirin. Ev mesîl têle ser Babîs.

Haçikan — Di nîvroyê Geveşilê de ye. Xirbe ye. Berê 40 mal tê de hebûn. Xanî hemî şikeft in. Mizgefteke zemanî jî tê de heye.

ÇIROKIYA MENDEKERAN — Dibêjin ko di nav eşîra Batûyan de qebileyek heye, jê re Mendekeran dibêjin. Zilamek ji wê qebilê xwînî bûye û hatiye nav jêliyan û konê xwe di Çiyayê Reş di guhera Kopê Kelehê de veda.

Wî xwextî Elî axayê bernihî axayê jêliyan bû. Elî axa derketi bû nêçîrê. Ji taştiya wan re hinek xwê diviya bû. Axê gote xulameki xwe bere wî konî hinek xwê bîne. Xulam çû konî. Sofikî pîr mezinê malê bû, heft kurên wî hebûn, her heft jî çekhilgir. Keçek ya wî jî hebû, gelek spehî. Xulam xwê bir û vegeriya cem axayê xwe û gote wî: « Ezbenî di wî konî de keçek heye zehf spehî, bi kêrî axê têt ».

Wekê xulam holê got, kêfa axê jî hat. Axê got: « Rabin em herin kon ». Wextê nîzingî kon bûn, sofiyê pîr gote kurên xwe: « Cilan bibin binê wê dara mezin, mehvan ji me re hatine ». Cil kişandin binê darê. Axê diviya bêle kon, ji bona keçkê bibîne. Ban kire sofî û got: « Mamo l, em mehvanên kon in » Mamo got: « Axa heçî mehvanên kon bin, li binê darê rûdinin ». Li binê dara mezin rûniştin, xwarin ji wan re anîn. Piştî xwarinê axê gote sofî:

— Bavê kuran, min divêt tu keça xwe bidî min. Ez axayê jêliyan im, tu çiqasî bixwazî ezê bidim te.

Babê keçkê got: Axa wekî tu cihê jêliyan hemî bidî min, ez keça xwe nadim te.

Elî axa ji vê gotinê enirî, rabû, berê xwe da Kêrtê; emrî xulaman kir ko herin talanê sofî bînin.

Xulam çûn li pezê wî dan. Bû hawar. Her heft kurê wî zilamî siwar bûn bi hawara pezê xweçûn. Li xulamên axê xistin, yek kuştin û pezên xwe vegerandin. Xulam vegeriyan û tiştê ko bi wan re bû gotine axê. Elî axa jûvan bû, hema zilamek rêkir mala wan, û got bêje wan: Bextê Xwedê û yê min ji wan re, bila ji cihê xwe nelebitin, tiştê ko bivên ezê bidim wan. Min neqenc kir, ji ber vî qasî ev fehîtiya ha hate pêşiya me. Ez îro diçim mal, bila sibe bên ba min, ez xulamê xwe jî di wan borim.

Sibebî ew zilam siwar bû, du kurên wî ji pê re, çû Bernihê, mala Elî axa. Axê zehf qedrê wî girt û nû got ê: Tu ji kû tê î, û bi kû ve diçî ?.

Wî zilamî li axê vegerand û got. « Ez ji nav batûyan xwînî bûme. Min qesta navê te kir. Dih wextê tu hatî mala me, te pirsa îş û halê me ne kir. Te hema got, keça xwe bide min, ev di nav eşîran de eybeke mezin e. Ji bona vî qasî min keça xwe ne daye te. Ez îro jî wê nadim te. Eve ez û zaroyên xwe û mala xwe li ber te ne. Heke min niho jî keça xwe da te ev dibe kêmahîke mezin. Ez vê kêmahiyê li ser xwe danavînim.

Axê got: Keça te, keça min e. Ji cihê jêliyan te kû derê bivê ezê bidim te.

Wî zilamî got: Hin şikeft hene, ji wan re dibêjin Haçikan, min ew divêtin.

Axê got, here min ew dane te.

Wî zilamî jî mala xwe anî Haçikan. Piştî midekî kurek yê wî çû Goveşilê, ên din Diyê, Bêdar, Girxetib û Gundikê û ew der ava kirin. Her neh gundên Mendekeran ji wan heft kuran zêde bûne, ji lewre dibêjine wan Mendekeran. Ew zilamê xwînî pêşiyê Resûl axa bi xwe ye.

## — 3 —

## LÊFÊN NÊWIYAN

Di Lêfên Nêwiyan de 7 gund hene. Gund tev de li qûna nivroyê Çiyayê Reş in. Ji wi çiyayî re dibêjin kever, çiyaki kêm dar, bi teht û kevir. Di Keverê de pezkovi zehf in. Di van gundan de mirov li ber deriyê xaniyan bisekine te dît hema bû qirçqirça stirihên nêriyan. Pez dikevin heta nava gund. Ji erdê van gundan zehfê wî bejî ye. Hinek aviyê wan di Royê jêliyan de heye. Hinek ji van gundan ava Diclê vedixwin. Hin kehnî ji hene. Hatina wan ceh û genim e. Birinc û penbûyê wan hebe ji hindik in. Tiri û hejirên wan zehf in; avî ji hene beji ji. Hatinek ya wan jî êzing û rejû ye. Êzing û rejûyên xwe ditinin ber ava Diclê û ji ticarên Mûsil û Cizîrê re difroşin.

Serkar — Îro xirbe ye. Berê 40 mal tê de hebûn. Ji Diclê vedixwin. Ev gund di seferberligê de xerab bûye.

Çêlikê Hemeliyan — Xirbe ye. Berê 20 mal tê de hebûn. Ji Diclê vedixwin.

Geliyê Osman — Di rojhelatê Serkarê de ye. Ava ye, 10 mal tê de hene. Kehnî lê heye, ji Diclê dûr e.

Nêwiyan — 20 mal tê de hene. Kehnî heye. Ji Diclê saetek û nîv dûr e.

Di nîvroyê gund de xanek heye, dibêjin ê Xana Kewan. Xaneke zehf mezin e. Mezeliin jê hêj ava ne.

Geliyê Heftar — Di rojhelatê Nêwiyan de ye. Îro xirbe ye. Beriya serferberligê xerab bûye, 20 mal tê de hebûn.

Kêrte — Kêrte ji Diclê du saet dûr e Kehniya wê heye, ava wê boş e. Di cihê jêliyan de bi pirahiya hejîrên xwe meşhûr e. Tirî û rezên wê ji zehf in. Di biniya gund de Kêrxwer, Gêrtin û Gêra Hejîran dehl û seyrangah in. Avahiyên gund 30 mal in.

Mala Şêx Mihemedê kêrteyî, xelîfeyê neqşibendî di vî gundi de ye. Mizgefteke kevin jî tê de heye. Ev mîygeft di zemanê Şêx Xalidê cizerî de hatiye çêkirin. Hezretê Mewlana ji Şêx Xalidê Cizerî re goti bû, di Cizîrê de mesekine, here Kêrtê, mideki li wê derê bimine, paşê here Basiretê û li wê derê qerar bigire. Basiret gundek yê dêrşewiyan e. Qubên Şêx Xalidê Cizerî, Şêx Salihê Sibki û Şêx Xalidê Zîbarî tev de li Basiretê ne.

## — 4 —

## ROYÊ JELIYAN

Di Royê Jêliyan de çardeh gund hene. Ev gundên ha tev de di bakur û di nîvroyê Royê Sor de ne. Royê Sor ji qwina Çiravê der dibe û di welatê Bikatê re tête neqeba jêliyan, û jê diçe Diclê. Gund hemî nizingî vê avê ne. Gelekê erdê wan avî ne. Birinc û penbûyê wan zehf e. Fêkiyên wan ji gelek in. Hinek ji van gundan di nav darên fêkiyan de naxuyin. Piraniya xaniyên wan şikeft in. Şikeftên wan gelek spehî û xweşbergeh in. Di nav wan de şikeftên olî, yanî dutebeq hene. Di şikeftan de derî diçin hev. Ji lewre mirov ji serê gund heta biniya gund di şikeftan re dikare here. Wekê li serê gund jinikek dan bikute deng diçe heta taxa jêrîn; şikeft welê deng didin.

Pîrêdel — Yanî Pîrê delal. Ev gund nîvxirbe ye. Îro tê de pênc şeş mal hene Gund dikeve bakurê Royê Sor. Ji Diclê nîv saet dûr ê. Di vî gundî de çinareke keverare heye; ava aşekî ji nava wê derdikeve. Di hundirê çinarê de quleteynek heye. Çarnikarên quleteynê ferş in. Tê de yanî di qurmê darê de cihê deh zilaman heye. Li ber vê avê aşek digere. Di nîvroyê Pir de, di ser Royê Sor re pireke darîn heye. Biharan wextê av radibe mirov di ser pirê re diçe. Her du milên avê teht in, pir qederê 50 mêtir bilind e. Li vê derê ziyaretek heye dibêjin ê Pîrê Delal.

Bernih — Gundê Elî axayê bernihî ye. Elî axa maqûleki xurt bû. Li Bernihê berê 100 mal hebûn. Îro gund bi xwe xirbe ye. Di nivroyê gund de, li ser Royê Sor tehtek heye jê re Keleha Bernê dibêjin. Teht hing du minaran bilind e. Keleha Elî axa li ser serê vê tehtê bû. Di nîvê tehtê de nizingî bişt mezel hene. Ev mezel bi pirahî bi pencere ne. Avdiza tehtê li serê tehtê qul kirine û anine heta Royê sor, û di nav avê re derêxistine. Di şerên berê de gava xelk di kelehê de asê dibûn û dijmin li wan dihate wer, xelkê kelehê ji serê kelehê û di avdizê re dibatin heta avê bêî ko dijmin wan bibîne. Ji wan mezelên nava tehtê re dibêjin Mira Bernê.

Milkê Bernihê bê qeder zehf e û ava wê têra milkê wî nîne. Ji lewre di tehtan re co kolane û ji çiyayên dorê av anîne. Cihên cowan bilind e. Di hin cihan de co qul kirine pencere êxistine ê, di hin deran de kulekine kiçik tê vekirine. Serê çend salan carekê xelk diçin dikevin cowê û di kulek û pence-

ran re gelaşan yanî zibilan tavêjin derve û cowê paqij dikin. Di Bernihê de mizgeftine zemanî, mizgeftine eqid jî hene. Ji her tiştê wî xuya ye ko Bernih avahîke kevin e, û merkeza zelamine xurt bû.

Şikeftiyan — Şikeftiyan gundekî mezin bû. Berê 100 mal lê hebûn, îro ancax 30 mal hene. Royê Sor di ber gund re dibore; kehniya wî jî heye. Xanî di nav şikeftan de ne. Dehlên gund zehf in.

Çemê Gewr — Berê 100 mal lê de hebûn. Îro 20 malek lê hene. Gund di keviya Royê Sor de ye. Kehniya gund ji heye. Xanî di şikeftan de ne.

Marosa Jêrîn — Xirbe ye. Berê 30 mal tê de hebûn. Li ser Royê Sor e.

Marosa Jorîn — Berê 40 mal tê de hebûn. Îro xirbe ye. Li ser Royê Sor e, û kehniya wî jî heye.

Asik — Xirbe ye. Berê 50 mal tê de hebûn. Ava kehniya wê tête ser Royê Sor.

Bilcûnan — 60 mal tê de hene. Di cihê Botan de ev der bi hêjir, hinar û bi dehlên xwe bi nav û deng e. Cihê wê parikî bilind e. Ji avê nîv saet dûr e. Di gund de kehnî heye.

Lodik — Xirbe ye. Berê 30 mal lê hebûn. Cihê wê bilind e, xweş e. Ji avê qederê saetekê dûr e. Kehniya gund heye.

Şikefta Ûsif — 40 mal tê de hene. Baserî avê ye, lê jê saetekê dûr e. Cihê wî bilind e. Kehniya wê heye. Dehlên wê di Çemê Şikefta Ûsif de ne, û zehf in. Birinc û direh ( garisê spî ) jî diçînin.

Hintaniş — Xirbe ye. Berê 30 mal lê hebûn. Royê Basiretê di ber gund re dibore.

Goyînan — Berê gundekî gelekî mezin bû. 300 mal tê de hebûn. Lê îro qederê 70 mal lê hene. Goyînan gundê Elî Hemanê bû. Mala Elî Hemanê di cihê jêliyan de maleke kevn e. Gund di qwîna rizdekî de ye, cihê wî bilind e, di bin re rokî kûr diherike. Miqabilê gund çiyakî bilind e. Li ser serê wî çiyayî kelehek heye, asêgeha gund e; dibêjin ê keleha Elî Hemanê. Elî axa tê de rûdinişt. Xaniyên gund di devê şikeftan de ne. Hatina wan avî jî heye, beji jî. Du aş li ber ava gund digere. Birinc û pênbû jî dajon. Hêjîrên wan jî hene.

Findik — 100 mal tê de hene. Av û hewa wê zehf xweş e. Dibêjin heçî ava Findikê vexwe û bayê wê li wî bide ew mirov zû namire. Kehniyên wê boş in. Gund bi xwe li ser cada Sêrt û Cizîrê ye. Hatina wan avî jî heye, beji jî.

Dêrik — Îro xirbe ye. Berê 10 mal tê de hebûn. Di vî gundî de kanîne delal hene, gelek spehî û xweşbergeh in. Cihê gund bilind e, di qwîntara Banê Azîzan de ye.

Gundên Lêf û Royê Jêliyan hemî koz in, Zivistanê berf nagirin. Ji bo vî qasî eşîra Dudêran, Zivistanê bi koçerî têne van deran.

## — 5 —

## GUNDÊN LODÊ

Gundên Lodê çar in :

Lodê — 60 mal tê de hene. Gundekî gelek spehî ye. Di nav jêliyan xweşiya av û hewa vî gundî bi nav û deng e. Gundek zehf bi zêdahî ye. Rezên wê bê qeder boş e. Di vî gundî de berê gelek roris « giyayê rengên sor û qirmiz » şîn dibû. Gelek sabûn jî çêdikin.

Lodê gundê Hesam axa bû. Hesam axa maqûlekî têrnan û dewlemend bû. Dibêjin savarê wî ji nav Xerzan, ji Ridwanê dihat.

Şişil — Ev gund ji Lodê cihê bûye; yanî birekî xelkê Lodê berî sih salî Şişil ava kirine û guhastin ê. Şişilji wekî Lodê gundekî têr rez e. Kehniyên wê ji boş in. Çiyayê Lodê dikeve neqeba van her du gundan.

Xwaran — Ji xwe gundekî kiçik bû. Vê paşiyê xerab bûye. Xelkê wî ji lodê bûn. Ji Lodê hatî bûn vê derê û 4 - 5 xanî ava kiri bûn. Lê debar ne kirine.

Şêx Şehwelî — 60 mal tê de hene. Gundekî dêm e. Di binê gund de hinek spîndar hene. Ehlê gund qantirçî ne. Zivistanê gelek berf tête vî gundî, û rê têne girtin. Di biniya gund de tehtek heye, ew text qul kirine û tê ve riyek vekirine. Jê re neqeba jêliyan dibêjin. Şêx Şehwelî ziyareteke meşhûr e.

## — 6 —

## NAVKURA BASAN

Di Navkurê dê çar gund hene :

Basan — Berê 100 mal tê de hebûn. Lê îro 10 - 15 mal lê mane. Gundekî dêm e. Di dora gund de birkin hene. Li ber van birkan titinê diçînin; titineke xweş lê çêdihe. Di cihê Botan de titina Basan meşhûr e. Rêzen gund zehf û taze ne. Kehniya gund jî heye.

Milan — Gundekî dêm e. 30 mal tê de hene. Ava wan ya vexwarinê ji birê ye. Li devê gund hinek dehlên wan hene. Di bin gund re cihek heye dibêjin ê Serê Herexê. Kehniyeke mezin lê heye. Ava kehniyê diçe heta Tanzê. Perên avê hemî spîndar in.

Dêwik — Li ser tixûbê eşîra Kever e.

20 mal tê de hene. Kehniya gund heye. Avî û bejiyên wî jî hene.

Dêrawid — An Dêra Dawid. Dikeve rojhelatê Basan. Gundekî kiçik e, titin û rezên wî baş û zehf in.

## — 7 —

## MALA JORÎN

Mala Jorîn heşt gund hene :

Tanzê — Berê bajar bû, digotin ê bajarê Tanzê. Îro gund e, 60 mal tê de hene; gundekî zehf bi av û dar û fêkî ye. Gund dikeve rojavayê Eynê. Spîndarên wê bê qeder zehf in. Di cihê jêliyan ji vî gundî têrspîndartir gund nîne.

Tanzê di Kurdistanê de cihekî bi nav û deng e. Cihê hakim û alîman e. Mîrên Botan tê de sikeh birîne. Nemaze di wextê Mîr Nasir de gelek sikeh hatine birîn. Hetanî îro wextê gundî erdê difetinin sikehên mîrên Botan peyda dikin.

Medresa Tanzê mereseke meşhûr e. Di wextê berê de 500 feqeh tê de dixwendin. Medrese heta wextê Bedir - Xan begî ava bû. Bedir - Xan beg cihên wê ên herifti ji nû ve da bûn ava kirin. Îro jî qederê 40 mezelên ava tê de hene. Quba Mîr Nasir di hewşa Medresê de ye.

Ji mala rîsipiyê wan re dibêjin mala Emer - Reşê.

Dibêjin ko Têmûrleng Tanzê vegirtî bû, lê ne gihaştî bû Dêrûya Kurêşan. Eskerên wî li hire şikestin û bi şûn de vegerîyan.

Qawix —Dikeve nîvroyê rojavayê Tanzê. 60 mal tê de hene. Cihê gund rast e. Gundekî bi av û spîndar e. Bakurê gund çiya ye.

Motila Emer — Ev gund nizingî ava Bihtan e. 20 mal tê de hene. Bakurê gund çiya ye. Li ser çiyê kelehek heye jê re Keleha Motit dibêjin. Ev keleh di wextê berê de asêgeha gund bû. Li pişta gund qubek heye, Ebû-Tîhar, ziyareteke êzdiyan e.

Motila Seyid — 40 mal tê de hene. Gundek bi dehl û spîndar e. Kehniya wî boş e. Aşê gund heye.

Sûsik — 40 mal tê de hene. Cihê gund girik, newal û mesil e. Pişta gund çiyayekî bi rez e. Gund dikeve bakurê Motila Seyid.

Gawat — Cihê gund wek yê Sûsikê ye, lê jê bilintir e. Di nîvroyê gund de çiyayek heye dibêjin ê Kevera Şêx Emer. 20 mal lê hene.

Çemê Pirê — Gund nizingî ava Bihtan e. 20 mal tê de hene. Gundekî bi werz e. Cihê gund bilind e Kaniya wî boş e.

Gêra Wîşiyê — Îro xirbe ye. Berê 50 mal lê hebûn. Cihê nêçîrê ye. Kewvedan û kewgîriya wî zehf xweş e. Gund dikeve rohelatê Gawatê.

## — 8 —

## MALA JÊRÎN

Deh gundên Mala Jêrîn hene :

Kifrê — Îro xirbe ye. Berê 50 mal tê de hebûn.

Girdaran — 80 mal tê de hene. Gund dikeve nîvroyê Tanzê. Gundekî avî û dêm e. Biniya gund newal e. Di vî gundî de erdek heye dibêjin ê Qusêr. Di vî erdî de bêrmek heye, bêbinî kûr e. Dora bêrmê hemî penbû û birinc e.

Koxikan — Cihê gund teht e, li ber Royê Babis e. Newalek heye, jê re dibêjin Newala - San. 20 mal tê de hene.

Serderînc — Îro xirbe ye. Berê 30 mal lê hebûn. Xaniyên gund şikeft in. Di pişta gund re rê naşixule, deverine dertne.

Lepikê Şêr — An Lepikşêr. Îro xirbe ye. Berê 50 mal lê hebûn. Gund li ser devê latekê ye. Xanî şikeft in. Di bin re Royê Babis diherike. Cihê gund ji avê gelek bilind e. Mirov ji binî dinihêre serê tehtê, kumê mirov dikeve.

Di vî gundî de zilamek hebû, mezinê gund bû. Digotin ê Haciyê Heso. Emrê wî çû bû 115 salan. Lêbelê tu kêmayî ne keti bû eqlê wî. Maqûlên dora jêliyan rêdikirin pey, ew dibirin cem xwe, ji bona ko şîretan li wan bike.

Berî şêst salî, Ferhad axa, zabitê jendermê qeza Dihê, hatî bû Lepikê Şêr. Ferhad axa bi xwe kurdmanc bû, ji xelkê Bidlîsê. Wî wextî kurê Hacî, Heyro mixtarê gund bû. Hacî jî ji derve, li ber dîwarê xênî rûniştî bû. Ferhad axa bi çend neferan ve gihaşti bû raserî gund. Gotin, ve ye hinek esker hat. Hacî got, cihê min bibin mal de. Kurê wî got ê : « Çire tiwê biçî mal de, Ferhad axa ye » Hacî got : « Kurê min ma ez ditirsim diçim mal, min navê ez kumê ser bibînim ». Cihê wî birin mal ve.

Ferhad axa hat, peya bû, û gote Heyro : « Ka xwalê Hacî ». Heyro got ê : « Xwe ji ber te veşartiye ».

Ferhad axa ban kir ê : Xwalê Hacî, çire tu ji ber min reviî ? Ez jî wek kurê tê me.

Hacî got : Ez ne ji ber te revîme. Ez ji ber kumê te revîme.

Ferhad axa got : Wekî ez vî kumê sor deynim, tiwê bêî ba min ?

Hacî got, belê. Ferhad axa kumê sor danî, Hacî jî hat balê û jê re got :

— Ferhad axa, ezê ji te re mesela kumê sor

bibêjim. Berf nîha wextê ko kumê sor hêj ne hatî bûn vî welatî; virkerê vî welatê ez bûm. Ji xêrî min kesekî din nizaniya: viran bike. Wekê min jî min dikir ez virekê bikim, êvarê min taxek titina Dêwikê dida hûr kirin, min digote Gozê (jina wî) « Cihê min başqe deyne, şkevika titinê jî deyne ber serê min ». Heta sibehê min qelûn vedikişand, min lihêfa xwe jî dikişand ser serê xwe, min mitale dikirin, heta spêdê. Min ew şkevika titinê hemî vedixwarin û ez saetkê jî ranedizam. Min virek pêk dianî, ser û guhên wê didan hev û min ew vir di civata maqûlekî de digot. Heta deh panzdeh rojan kesî nizaniya ko ew vir e. Wextê kumê sor batin vî welatî ez dibînim di ciyatekê de zilamek radibe vireke mezin dike; ew jî dizane ko vir e, ehlê civatê jî. Lê ne ew li ber xwe dikeve û ne kes dibêje ev çi vir e, te kiriye. Ji ber vî qasî min navê ez kumê sor bibînim.

Bûtehran — Raserî Diçlê ye. 10 mal tê de hene. Xaniyên wî şikeft in. Cihê gund bilind e. Milkê wan dêm jî heye, avî jî. Ji xwe herçî gundên Mala jêrin in, di Qusêrê de milkê wan heye.

Wehsid — Gund li ser rastekê ye. 20 mal tê de hene. Milkên gund avî ne. Di nav gund de kehnî heye.

Seyfî — Di ber vî gundî re ava Bihtan digehe ava Diyarbekrê. Kehniya gund jî heye. 40 mal tê de hene.

Balak — Gundekî xirbe ye. Berê 30 mal tê de hebûn.

Bawerneker — Xirbe ye. Gundekî bi spîndar e. Berê 30 mal tê de hebûn.

— 9 —

## DÊRUYA KURÊŞAN

Di Dêrûyê de neh gund hene. Gund hemî di newalekê de ne. Her du milên newalê çiya ne. Milê bakur Çiyayê Kehniyan, milê nîvro Çiyayê Kosiyan. Babis di newalê re dibore û taveje Diclê. Hatinên van gundan bi pirahî goz, rez, birinc, spîndar û her texlît fêkî ne. Gund di nav daran de winda ne. Heta ko mirov nekeve nava gund xaniyan nabîne. Nemaze gozên wan zehf in. Bi tenê di Reşênê de, qederê (10 000) goz hene.

Di çiyayên van gundan de sûmên kevin zehf in. Dewarên van gundan ji ber berfê şeş mehan nikarin berdin.

Reşêne — 100 mal tê de hene. Gundekî têrkehnî ye. Deh deqîqe di ser gund re ji qwîna Çîravê kehniyek der dibe, navê wê Kehniya pehn e. Cowa aşekî jê çêdibe. Ava wê hewqas sar e ko mirov bi derbekê dê nikere têr vexwe. Ava vê kehniyê di nav gund re derbas dibe. Bi rê ve ava çend kehniyên din tevlî wê dibin, ev av dibe rok. Aş di nav gund de ye.

Emtê — 20 mal tê de hene. Babis di ber gund re dibore. Kehniya gund jî heye.

Kehniya Biyê — Kehniya Biyê di cihê jêliyan de kehnike bi nav û deng e. Di dora kehniyê de zehf darên tû û fêkîne din hene. Serê kehniyê dibe sih û seyrangeh e. Avahiyên gund 10 mal in.

Bêngov — Guhd îro xirbe ye. Berê 10 mal tê hebûn

Elezîz — Ev gund di sala 1930î de ava bûye. 10 mal lê hene

Xaniyê Nizêr — 20 mal tê de hene. Kehniya gund heye.

Basnê — Gundekî bi dar û kehnî ye. 30 mal tê de hene.

Kûşê — Avahiyên gund 40 mal in. Gund kehnîke spehî heye.

Kûşa Kevin — Herwekî kurdmanc dibêjin: Nû hatin, kevin xelal in, pişti ko Kûşeke din ava bû, Kûşa Kevin xerab bûye.

★ ★ ★

Pişti ko me tixûb, çiya, çem, deşt, newal û gundên jêliyan gotine emê niho tiştine din wek heywan, dar, giya, kulîlk, pîşe û sinhet, hekîmî, hin adetên vê eşirê, hatinên axê û malmezinên jêliyan bibêjin.

HEYWAN — Heywanên wan ên kedî her texlît terş û dewar in: pez, hesp, ker, hêstir, ga, çêlek û gamêş. Hespên wan bergîr in. Nik xudanmeraqan hespine kihêl jî peyde dibin.

Herçî heywanên kûvî, di cihê jêliyan de ev heywanên ha peyda dibin: hirç, piling, wişk, qwîz, rovî, kêrvoşî, heftar, sixur, kurîbeşk, beraz, gurî, siorî, jijo, seyavî, pezkovî, gornebaş, mar (texlîtê maran: koremar, marê-reş, marê-teyar, tirmar, keşkînî, kere, dûvşûjin, stobazin marê avî) marmarîşok, kêlgeratik, gumgumok, balifzerk, şemşemotik, dûpişt, mişk, koremişk, sêvil, xilt, cirt, zof, beqmar, mûrî (texlîtê mûriyan: reş, hesinbazik, zer, gêrik, rêviş).

MASÎ — Cewr, ferxecewr, şebot, mak, marmasî, naqor, sêlexwer, heşînok, zikdêlik. devhesp, birek, hefrî) beq, req, kêvcal, kurkurik, meretest, cobir.

TEYR — Qertel, şahîn, wilih, dubrak. laçin, kurt, şîsyarik, bazih, başok, bûm, pepok, kund, leyleg, qir, qirereşk, qira-piştkulav, danîsorik, qijik, çilêçilê, kew (kewê gozel, kewê çir, kewê sûsik, kewêkenger) tivilî, zerêle,

şilkak, kurkurînek, gewrêle, darkutik, kevok, dolavrêsk, por, beytik, zerzûr, titî, qitik, çûkmaşik, ibêd, kerak, bilbil, şehlûl, şivanmijûlik, mirîşka avê, mirîşkor, kutepir, bet, quling, werdek, qaz, xewas, hacireşk, semawatik, teztezînetî, dawidê dunikil.

DAR, MÊW, DEVÎ — Di cihê jêliyan de her texlît darên bi ber û bê ber hene : Hirmê, karçik, xox, hilû ( çend texlit in : hilûyê zer, hilûyê reş, havînî ) - qeysi, m'jmijik, hêjîr ( çend texlit in : bêhnatî, şingalî, zerik, bêrkevanî, dirbî, bacanî, rijik, tefarî ) bihok, hinar ( çend texlit in : tirş, şêrîn, rarişok ) sêv ( çend texlit in : guhijok, şekirî, xişxişok, emerê reş, xeylî, çermkeri ) tû ( çend texlit in : reş, ezreqî, garisi, şêmi ) tûtirk, kizwan ( gir, hûr, bitim, benhûrik ) mazû, gilor, gijik, gijol, guhij, berû ( berûyê berû, berûyê mazû ) beranî, gezû, belalûk, simberî, êvrist, soredar, spîndar, bî, beniştok, kevot, benav, gulşirem, gez, ajik, behîv, sênc, çinar. Texlîtê tiriyên wan ev in : teyifî, gozane, sincêrî, kerkûşî, genclkî, gewrê mir, gewrê mehmo, reşê çê, sorê difsê, berisane, tortori, gozanê sor, binê tat, tiliya zeynebê.

GIYA — Giyayên xwarbar yanî, yên ko têne xwarin : Quzmaz, tolik, soryaz, sîrmok, sîrik, tirşok, kereng, kengzer, helis, kidadik, sêvbinerdê, pariyê mihê, benik, gozerebik, spindik, gulmêw, selmik, pûnk, kariyê-belek, kariyê - kelehê.

Giyayên nexwarbar û kulîlk — Giyareş, nefel, kelik, ket, çever, zirçik, giyayê - keran, kêlemper, kariş, fîrêz, sorik, nêrgiz, hendekû, bêrzan, hêro ( hişk dikin, dikin toz û jin porên xwe pê dişon; por pê nerm dibin ) sosin, gemgilok, beybûn, kulîlka Nîsanê, bililazik, bûklindêr, rihan, rihana lawan, gul, şilan.

PÎŞE Û SINHET — Di nav eşîrên Botan de herçî dêmanî ne di tevnê de kêm in; koçerên wan xurt in. Di nav jêliyan de jin kej, penbû, hirî dirêsin, bi têşiyê goran çêdikin, Hinek ji tevnê çêdikin, lê sivik. Wek têrik û ciwal. Penbû bi dolavê dirêsin dikin rîs û rêdikin Sêrtê. Sinhetkarên Sêrtê heqê destên xwe dibin û pê caw û stenbolî çêdikin.

Dî nav jêliyan de qeleçî hene. Ev qeleçî gêsin, bêjing, serad, kêr, milhêb, hestîf, dirêşik û kilpidanan çêdikin. Hin ji van qeleçiyan bi sinheta tiflngê jî dizanin.

Bacolî, reşikan çêdikin û xeratiyê dikin. Xelk bi pirahî cenan û cotkar û rezvan in.

HEKÎMÎ — Li Kurdistanê hekimî bi zehfî wek malmelan pêmayî ye. Ji wan hekîman re, hekîmên kurdmancî dibêjin. Her eşîrê mala hekîmê wê heye. Hekîmên jêliyan ji eşîra Alikan in ; mala Silêmanê hekîm.

Ev hekîm her tex'it nexweşî û birînan derman dikin. Birînan bi kewê derman dikin. Rûn û hingivînî tevlî hev dikin û pê dikewînin. Fitîlan jî bi birînan didin. Ji bo kewê dermaneki din jî heye. Wî derwanî ji giyê û ji dermanê spî yê şeşxanê çêdikin. Ev, ji her dermanên din rahetir û çêtir e. Dermanên piştî kewê jî hene, zehrên wan ji giyê çêdikin. Wan giyan hekîm bi xwe ji çiyan didin hev. Heke berik di nav hestî de ma, goşt diqelêşînin û berik derdixînin. Carina hestî dişkê. Hingê wî dicebirînin. Berik bikeve sêvokê û di milê din re tavêje, dermanê spî datînin her du devên birînê heta ko şewata wî bigehe hev. Hekîm bi goşt û xwarinine din qewet didin birîndarên xwe.

Carina birîndar ji tirsa canê xwe dimirin. Ji lewre birîndaran bi tenê nahîlin. Xelk têne dora wan û nav didin wan.

Xwarina nexweşan bi adetî tiştine tirş in. Hinarê şêrîn, şorbeşîr, hingivî, epraxê birinci; diklozê bistî jî didin wan.

Nexweşiyên ko di nav jêliyan de peyda dibin an yên ko pê bihîstine ev in : Ta, êşa zirav, zerik ( zerika reş, zerika zer ) xurî, sorik, êşa giran, zikêş, qolinc, bayê sor, bayê spî, guhêş, serêş, çehvkulbûn, devkulbûn, titme, zam, nav, xilt, mizavokî, keçelî, gewrik, arsim, sermayî, kuxik, taya sêroje, heftawik ( heftûwik ) dilêş, xişrûk, neks, beqik, haloq, şirşimak, argûşketin, mûmar, kulmêrû, bûkik, perde, ewr, aya - reş, sikutok mêkutok, qofî, biji, devxwarî, falinc, hêvketin.

Bi hekîman re bazar e; heke nexweş rahet bû heqê xwe dibe, heke bi birîn an bi nexweşiya xwe ket hekîm bi xwe tu tiştî naxwaze. Herçî nexweşiyên sivik xelk xwe bi xwe derman dikin. Jinên sere bi dermanên wan dizanin.

Li Kurdistanê, nemaze di cerahiyê de hekîmine bi nav û deng peyda dibin. Ev hekîm ji eşîrên din têne xwestin.

Peyayê ko di şeran de birîndar dibin heqê hekîmên wan axa dide.

HATINÊN AXÊ — Di zemanê berê de, gava axatî hebû û Kurdistan li ser rêzika xwe a kevin bû eşîran wêrgû dida axayên xwe. Hatinên axayê jêliyan ev bûn :

Doşanî — Li Biharê her gund li gora halê xwe pezek an dido an hêj bêtir dibir axê.

Kêsim — Li Pehizê, her gund li gora zêdayîha xwe barek dido difs, birinc, genim dida axê.

Êdanî — Di êdan de êdaniya axê hebû. Pez, dexil an difs.

Deman — Axa xurt bîwa ne dihişt ko bajarî deman bikin. Axê deman bikira fêda gundiyan jî tê de hebû.

Spîndarî — Di Gera Xanî de li serê tofa-spîndarê axê heta pênc mecidiyan dibirin. Di tofekê de (300 - 500) spindar hene.

Dûvikê Qemçûrê — Wextê qemçûrê wekê qemçûrçî dihatin û diketin gundan axê pezê gundiyan ve lişırtin. Gundiyan jî tiştek dida axê.

Ticarî — Wextê ticar dihatin û hin tişt dikirin, di wê dan û standinê de para axê hebû. Para axê mixtaran ji ticaran distand û didan axê. Li serê pezekî çerxikî. Li serê hiriya pezekı qemerikî. Li ser xunkariya tewaş çerxikî (xunkarî heft heqe ne)

Pêrûya Kozê — Koçerên ko dihatin erdê jêliyan heqê koza xwe didan xwediyan. Jê pê ve xwediyê kozê pêrûya axê ji wan distand û dida axê. Ev koçer di mideta ko di erdê jêliyan de diman, li bin destê axayê jêliyan bûn. Şer biwa digel jêliyan diçûn şer.

Ev hatinên axê ên binavkiri bûn. Ji van pê ve axa biçiwa ba mir an ba hikûmetê, teşxeleyek lê biqewimiya ji eşirê distand. Dîsan axa milkek bikiriya û pereyê wî têr ne kira pereyê mayîn li gundan beş dikirin û mixtaran ew pere didan hev.

CEZA — Axaxê jêliyan wek axayên Kurdistanê ên din xelkê eşira xwe cirm dikir. Ji cezayê ko ji xelkê dihate standin para axê jî hebû.

Dizî — Axa li malê dizî digeriya, heke ew peyda kir vedigerand xweyî û tiştek jê ji xwe re hiltanî.

Kuştî — Axê mala xwînî talan dikir û dida xwediyê kuştî û ji xwe re jî tiştek dibir.

Birîndar — Axê heqê birînê ji carih distand û dida birîndar. Tiştek jî ji xwe re dihişt.

Dawa — Ji dawayên ko axê bi xwe şerieta wan dikir heqê qazîtiyê ji wan distand.

MALMEZINÊN JÊLIYAN — Herwekî me di teşkîlata eşîra jêliyan de û di rêza gundên wan de gotine, me sehitiya şeş malmezinên jêliyan kirine.

Elî Axayê Bernihî — Tiştê ko me di heqê wî de zanî di gundê Bernih de gotiye. Îro ji mala Elî axa tukes ne maye. Bernih ji gundên Royê jêliyan e.

Elî Axayê Qadê — Elî axa ji gundê Qadê ye, ji gundên deşta Mişarê. Ji mala wî du zelam hene

Elî Hemanê — Ev Elî axa ji Goyînan e, gundekî Royê Jêliyan. Ji vê malê jî çend zelam hene.

Hesamê Lodê — Ji xwe herwekî nav li ser e, Hesam axa lodi bû. Çend zelam ji vê malê jî hene.

Mala Elî Bekiran — Mala Resûl axa, axayê jêliyan a îro bi xwe ye. Çirokiya vê malê me di gundê Mendekeran de gotiye. Şecera Resûl axa ji ev e: Bekir, Elî, Miheme, Resûl, Miheme û kurê wî Resûl axa. Navê kurê Reşûl axa ê mezin, yanî weliehdê wî, Evdirehman e. Resûl axa li bin xetê ye, li Deşta Hesinan, di gundê Çem-Şeref de rûdine, û azayê meclisa mihafeza Hesiçê ye. Xwedê rikêba wî dirêj bikit.

Şam: 18 Îlon 1941 HEREKOL AZÎZAN

---

## WELAT

Welat tu î, çavreş î
Tev bihust û her xweş î
Jiyin di te, pir geş i
Tu î, tev bax û bistan.

Ez fedekarê te me
Ez bi goriya te me
Leşkerê ala te me
Mirin ji ber te erzan.

Erdê te jî zehf bi xêr
Birçî ninin, hemî têr
Peyayên kurd weke şêr
Piling in ew, li çiyan.

Ji bo te dilkelî ez
Dikim bigehim bi lez
Da bibinim mêrg û rez
Herçi zozan, Serhedan.

Lê çi tête min ji dest
Mame bêhiş û sermest
Bo armancê divê west
Aza bibi Kurdistan.

SIBHIYÊ DIYARBEKRÎ

## CENGA-CANÎ

Hilo rabe birayê min tu kanî
Ji hewşê-carekê derkev li banî
Ji xew rabin hemî tev de bi carek
Binêrin qenc li halê vî zemanî
Biher e dê bibarit ewr û ezman
Heşîn kir dexl û danek bo me anî
Xebat e her xebat e her xebat e
Bi ceng bin mal û mendal û bi canî
Rojên serma bizanin îro çûne
Ji îro paş xweşî kefte zozan î
Li dotmama xwe be aşiq eya kurd
Tu qedrê wê bizane her giran î
Me xemlandî ji bo te bûkeke taze
Ji destê xwar û bedxwaran deranî
Ji nav bûkan ew e pêşkêşa hemyan
Şeveq roj e bilind e aşiyan î
Hemî dinya dixwazit wê bibînit
Tînê em xef dikin li jorê xanî
Ji bo te yek nivîştî botî çêkir
Divêtin ka çi gotî tu bizanî
Bi şahî be bi şahî be birao
Tu her bijî bi dinya şadimanî.

M. E. BOTÎ

# REWŞA DINYAYÊ

ŞERÊ ÛRIS — Ev şer bêi ko xwe sist bike dom dike. Ûris gelek li ber xwe didin û bi mêrani şer dikin. Lê ji wan re çek û posat divêtin. Ingilîz û emêrikaniyan soza xwe da bû ûris ko arîkariya wî bikin. Ji bona vê yekê ji konferansek di Moskoyê de wê bibûta danin. Di vê konferansê de işê arikariyê wê bihata mizakere kirin

Ev du meh in, dinyayê qala vê konferansê dikir û ûris dixwest ko konferans zûka çêbibe. Dawî dawî li 28ê Îlonê nimînendeyên ûris û ingiliz û emêrikanî di Moskoyê de gihane hev û dest bi mizakera işê arîkariyê kirine. Ingilîz û emêrikaniyan digot şer bi halina Zivistanê ji xwe wê bisekine, û li Biharê wê ji nû ve dest pê bike. Heta hingê jî wê wext hebe ko em bikarin arîkariya ûris bikin. Lê ûris dibêjin şer li Zivistanê nasekine, elman di şerê xwe de wê pê de herin û Havin û Zivîstan ewê direjî me bikin, ji lewre divêt arikariya ingilîz û emêrikanî bê derengî û etlahî bigehe deslên me.

Ingilîz bi xwe di şer de ne û ji her wextî bêtir hewcedarê çekan in. Çekên ko ew bi xwe çêdikin ne bési wan e, û ji lewre ji Emêrikê çek û cebirxanê ditînin. Herçi Emêrike ye, febrikeyên wê tev de ji bo dewletên ko şerê elmanan dikin dixebitin. Nemaze ji ingilîzan re. Ji milê din Emêrike ji nû ve ordûkê çêdike, ordûke mezin. Ji wê ordiwê re jî çek û posat divêtin. Ordiwa emêrikanî berê (225000) zelam bûn. Îro ew ordû gihaştiye milyon û nivekê. Ji milê din tiştê ko ji ûris re divêt bê bed û hesab e.

Ingilîz û emêrikanî dixwazin bi her awayî arikariya ûrisan bikin û nehilin ko ûris bişkê, lê herwekî Mister Çorçil gotiye Ingiltere nikare çekên girava xwe kêm bike Ji ber ko elman dikare berê xwe ji ûris bade û bide inglîzan.

Mister Çerçil li 30ê Îlonê di meclisê de li ser vê meselê xeber da û got ko di vî şerê mezin de gelek nişkegavî hene, yanî tiştine welê ko dikarin ji niskekê ve bîqewimin. Ji lewre ji sondxwariyan re divêt di ner qada şer de bazir û xurt bibin.

Li gora gotina Mister Çorçil vê Zivistanê elman dikarin şê tiştan bikin : Şerê ûris bisekinînin û di riya Libyayê re direjî Misrê bikin. Di riya Spanyayê re dakevin Efrîqa roava. An berê xwe bidin girava Ingilterê û rast bi rast direjî ingilizan bikin.

Ji roja ko şerê ûris dest pê kiriye tiştek heye ko hergav têle birê û di dora wî de gelek axaftin çêdibe. Ingilterê esker derêxista Ewropayê û ji par re li elmanan bixista Bi vi awayî Ingilterê ji nû ve pê li erdê Ewropayê dikir û barê ûris ji sivik bibû. Hebû ko bi vê derbê elman bişkê û şer jî xelas bibe.

Dema Mister Çorçil di meclisê de xeber dida ev mesele ji vebû. Serekwezirê ingilîzan di vê babetê de stexili û got ko herçend di şerê ûris de xesareke mezin giha be ji elmanan ordiwa elmanan hêj xurt e. Jû pê ve Mister Çorçil da zanîn ko ev mesele îşeki eskeri ye. Ji lewre nabe ko li ser vê meselê eşkere bête xeberdan. Ji ber vê yekê serekwezirê ingilîzan ji meclisê re ne da zanîn heke ingiliz dikin esker bişînin Ewropayê û heke şandin, kengê.

Herçî şer bi xwe roj bi roj germtir dibe. Herwekî xwendevaên me dizanin elman ji mêj ve gibaşti bûn dora Kiyêvê - payitextê Okranyayê - û zor didan ê, lê hêj ne keti bûn ê. Li 19ê Îlonê Kiyêv ket destên elmanan. Baskekî ordiwa elmanan berê xwe da aliyê rohelê û bajarê Poltavayê jî zemt kir. Poltava dikeve nivroyê roavayê Xerkovê û jê qederê 125 kilomêtir dûr e. Xerkov bajarekî sinahî ye. Gotino febrîkeyên Xerkovê li rojê 100 tangi çêdikin. Ji ordiwa elmanan baskekî din berê xwe daye Rostovê. Rostov deriyê Qevqasê ye. Ehemiyeta Qevqasê jî ji ber pêtrolê geleki mezin e. Li gora nûçeyên paşîn dilê ingilîzan heye di Ecemistanê re, ordûkê bişînin Qevkasê û pêtrolên Bakoyê bihemînin. Generalê ingilîzan ê bi nav û deng, general Wêvel vê paşiyê çûye Qevqasê. Dibêjin ko ordiwa ingilîzî wê here heta Rostovê û li wê derê pêşiya elmanan wê bigire. Ji ber ko heke elman ketin Qevqasê, ji wê derê, wê bixwazin, di riya Ecemistanê re, dakevin Iraqê û pêtrolên wê ji bêxin destên xwe. Ji lewre dikeve serê mirovan ko ingiliz esker bişînin Qevqasê.

Lêningrad û Odese weke xwe ne û şerên xwe xweş dikin.Nemaze di Lêningradê de şerine giran û xwîndar çêdibin. Dibêjin ko di Lêningradê de milyonek eskerê ûris heye. Ji van eskeran pê ve ji ehaliyan herçî çekbilgir ew jî ketine şer. Mixdarê van çekhilgiran ji milyonekî bêtir texmîn dikin.

Elman di nivro de zorê didin Kirimê jî. Kirim di Behra reş de nivgiravek e. Yanî

DI RADYOWÊ DE

## WEŞÎNEKÊN KURDÎ

BÊRÛT RADYOWA ROHELAT

PÊLÊN KURT ( 37, 34 ) PÊLÊN NAVÎN ( 293, 50 )

SAET : 6, 30 heta 6, 45 p.n.

Radyowa rohelat hero piştî nivro ji saet şeş û nîvan heta şeş û çel û pênc deqîqan bi kurdî diweşîne. Di her weşînekê de nûçeyên dinyayê û stra nine kurdmancî hene.

RADYOWA BEXDAYÊ

PELÊN KURT ( 30, 50 ) Û ( 42, 50 )

SAET : 5, 45 heta 6

Radyowa Bexdayê ji hero piştî nivro ji saet pênc û çel û pêncan heta şeşan bi kurdi diweşîne. Şandiyarê Bexdayê ji carina stranine kurdî dide.

---

sê aliyên wê behir alîki wê bej e. Ev bej ji gelek teng e, îşê çar kîlometiran. Ûris di vî erdê teng de asê bûne û Kirimê midalehe dikin Di nivroyê Kirimê de Sivestepol heye. Ev bender wargeheki stola ûris e. Heke elmanan Sîvestepol ji zemt kir ev iş ji stola ûris re zehmet e. Ji milê din, bi ketina Sivestopolê rewşa Odesê jî xerab dibe. Ji ber ko Odese ji bejê mehsûr e, her tişt jê re, di riya behrê re ji Sivestopolê têt. Ji lewre ûris cehda xwe dikin ko Kirim nekeve destên elmanan.

Me qala konferansa Moskoyê kiri bû. Ev konferans sê rojan dom kir û belav bû. Dibêjin ko di vê konferansê de ji bo arikariya-ûris her tevdîr hate ditin.

Li gora nûçeyên Londrê ên paşîn elman gihaştine dora Xerkovê û zorê didin ê. Ordiwa Merêşal Bûdyeni bi xurtî li pêşiya elmanan sekini ye. Dîsa li gora wê radyowê elman di Kirimê de hinek pêş ve çû bin ji ûrisan xesareke mezin gihandiye elmanan.

ŞERÊ EFRÎQAYÊ — Herweki me berê ji goti bû delêletin hene ko şerê Efrîqayê wê dest pê bike. Di wê qadê de, şerên cihnaskirinê ( istikşaf ) xurt bûne. Talyan ji bi vapoaan esker û çek ditinin Lîbyayê. Ingilîz li wan vaporan dixin. Di dora Tobriqê de şerine topçiyan û brlatiran çêdibin. Lê şerê rastîn hêj dest pê ne kiriye.

Şam : 3 Çiriya Pêşin 1941 NÊREVAN

## ŞIHIR

### Û EDEBIYATA KURDÎ

REFÎQ HILMÎ

Kitêbeke spehî, çeleng û hêja, 146 rûpel. Mirov gava vê kitêbê dibe destê xwe, destê wî pê tijî, dilê wî pê geş û germ dibe. Refîq Hilmî di vê kitêbê de qala hin şairên soran ên paşîn kirine. Bi kurtî biserhatiya wan gotiye û hin şihrên wan belav kirine û li eserên war hûr bûye. Kitêb bi ber awayî tekûz û lihevhatî ye. Bi tenê tîpên wê ne tîpên me ne. Kitêb bi tîpên erebî hatiye çap kirin. Ji lewra xwendin û sehkirina wê ji bo me dişwar e. Me hin tişt jê seh kiri be ji, ne bi temamî. Di rûpelê' kitêbê è paşîn de dibêje : « Hêwaman wa ye ke zorî pé neçê bergî diwemî em kitêbe le çap bidên ». Jê dixuye ko ev kitêb ji du cildan bihevketî ye. Ya ko di destên me deye, cilda pêşîn e, a didowan jî li pey e. Refîq Hilmî kitêba xwe pêşkeşî xortan kiriye û di rûpelê pêşîn de gotiye :

### DIYARÎ

Em çen lapereye ke awineyeke sûret û sîreti hendî le şaire nawdarekani Kurdiştani Iraq be winey deske guliki rengawreng û bûnxweş derêxa ke her guliki le baxêk helbijira bi pêşkeşi lawani kurd û be taybetî pêşkeşi ew qotabiye xweşewistane ekem ke le qotabxane berzekan da exwînin û wê da le şihir û edebiyati kurd şitikyan ber çaw nakewêt. Eger bem sipare biçûke tiwani bêtim ke giyani edebî ewan becûlinemewe teqelayek bo pêkhinan û deshinani bergî diwem êdam lelam siwik ebî û giyanî niştemanperwerîm taze êbêtewe.

Di vê cildê de Refîq Hilmî li şairên jêrîn hûr bûye : Ehmed begê Sahibqiran. Ehmed begê Wesman paşa. Emîn Feyzî beg. Emîn Zekî beg. Eşîrî ( Şêx Evdilxaliq ). Ahî ( Salih efendî ). Bêxod ( Mela Mehmûd ). Bêkes ( Faîq ). Pîremerd ( Tewfîq). Hacî Qadirê koyî. Heriq ( Mela Salih ). Hemdî ( Mela Hemdûn ). Xakî ( Mela Mihemed ). Xeste.

## BINGEHÊN GRAMÊRA KURDMANCÎ

BI NAVÊ YEZDANÊ PAK Ê DILOVAN Û MIHIRVAN

— 8 —

Şaneka Tarîxî — Gramêra frensizî dibêje ko zmanê frensizî veqetandekên xwe ji pronaveke latînî girtine. Gelo me yên xwe, ev bêjeyen hûr, ji kû girtine ?

Li gora tedqîqatên ko heta niho min çêkirine, me jî veqetandekên xwe ji hin pronavan girtine, lê ne ji pronavine biyanî, ji pronavine xwe.

Belê, veqetandekên me ên binavkirî ji pronavine me en işarkî bi der hatine. Herwekî pêş-

detir dê bêle gotin « yê, ya, yên » pronavine işarkî ne û veqetandekên me ên binavkirî ji wan hatine pê. Di esl û bingehî de gava ev pronav diketin pêşiya navdêrekê û dibûn rengdêrine işarkî « di » yek diket navbera wan û navdêrê. Mesela gotina « Hespê Soro » di eslê xwe de « Hespê di Soro » [1] ye.

Bêdiro, pronavên « yê, ya, yên » di şiklê « ê, a, ên » de bûne veqetandek û bi paşiya navdêran ve zeliqîne; carina ji ketine pêşiya rengdêran. Yanî « Ev hesp yê Soro yê » bûye « Ev hespê Soro ye ». Mîsalên jêrîn biserveketina veqetandekên kurdmancî bi temamî şanî didin.

| | |
|---|---|
| Ev hesp, yê di Soro ye. | Ev hesp, yê Soro ye. |
| Ev, hespê di Soro ye. | Ev, hespê Soro ye. |
| Ev hesp, yên di Soro ne. | Ev hesp, yên Soro ne. |
| Ev, hespên di Soro ne. | Ev, hespên Soro ne. |
| Ev mehîn, ya di Soro ye. | Ev mehîn, ya Soro ye. |
| Ev, mehîna di Soro ye. | Ev, mehîna Soro ye. |
| Ev mehîn, yên di Soro ne. | Ev mehîn, yên Soro ne. |
| Ev, mehînên di Soro ne. | Ev, mehînên Soro ne. |

Herçî veqetandekên me ên nebinavkirî, me şiklên wan ên pêşin, yanî yên ko bi navdêreke bê bireser in, me ew ji pronavên xwe ên nebinavkirî « yek » û « hin » girtine û ew xistine paşiya navdêran.

| | |
|---|---|
| Yek hesp hat. | Hespek hat. |
| Hin hesp hatin. | Hespin hatin. |
| Yek mehîn hat. | Mehînek hat. |
| Hin mehîn hatin. | Mehînin hatin. |

Herçî veqetandekên nebinavkirî, yên ko dikevin paşiya navdêrên ko bireserek bi wan ve bûye, di pêkanîna wan de, pronavên işarkî û ên nebinavkirî arîkariya hev kirine û ew anîne pê. Herwekî ji mîsalên jêrîn dixuye.

| | |
|---|---|
| Ev hespek yê di Soro ye. | Ev hespek yê Soro ye. |
| Ev, hespekî di Soro ye. | Ev, hespekî Soro ye. |
| Ev hespin yên di Soro ne | Ev hespin yê Sore ne. |
| Ev, hespine di Soro ne. | Ev, hespine Soro ne. |
| Ev mehînek ya di Soro ye. | Ev mehînek ya Soro ye. |
| Ev, mehîneke di Soro ye. | Ev, mehîneke Soro ye. |
| Ev mehînin yên di Soro ne. | Ev mehînin yên Soro ne. |
| Ev, mehînine di Soro ne. | Ev, mehînine Soro ne. |

Bi vî awayî veqetandekên me ên binavkirî û ên nebinavkirî hatine pê.

Di vê ravekê de kêmahiyek dikeve ber çavan. Gelo « î » û « e » yên ko di gotinên « hespekî Soro » û « mehîneke Soro » de têne dîtin, ji kû peyda bûne. Divêt ev tebsîra tewanga pronava nebinavkirî « yek » bibe. Ji xwe ev pronav di eslê xwe de jmarnav e, û jmarnav navdêran ditewîne û ev têwang yanî û tewanga jmarnavan di ser hemî tewangên din re têle girtin. Heke me ew gotin vegerandine şiklê jêrîn ew « î » û « e » ji bi der tên.

| | |
|---|---|
| Yek hespî Soro. | Yek mehîne Soro. |

Herçî « e » ya « hespine Soro » ye ev « e » di eslê xwe de « en » bû û « n » jê ketiye û li şûna « hespinen Soro » îro dibêjin « hespine Soro ». Ji xwe « n » işareta gelejmariyê; û ji ber ko di « ine » de « n » ek heye ji xwe jê re hewce namîne.

## III — PRONAV

72 — Pronav ew bêje ye ko dikeve şûna navdêrê. Pronav, mêjer û carina jî zayendê navdêrê dide zanîn. Ji hêla din pronav wezîfeyên navdêra ko dinimine li sêr xwe digere û wan ditîne cih.

Di komekên jêrîn de : « Zimanê laleki ji yê virkereki çêtir e. Du diz ji bo kereki dizî pev diçûn; yekî dixwest wî bifroşe, ê din dixwest pê karekî bike. Bayê zozanan ji yê deştê xweştir e. Ewê ko hat birayê min bû » bêjeyên « yê, yekî, wî, ê, pê, yê, ewê » pronav in. Ji ber ko ew ketine şûna navdêrên : « zimanê, dizekî, kerî, dizê, bi kerî, bayê, mirovê ».

Bêdiro, heke me ev navdêr vegerandine şûna wan pronavan ew komek dikevin şiklên jêrîn. « Zimanê laleki ji zimanê virkereki çêtir e. Du diz ji bo kerekî dizî pev diçûn; dizekî dixwest kerî bifroşe, dizê din dixwest bi kerî karekî bike. Bayê zozan ji bayê deştê xweştir e. Mirovê ko hat birayê min bû ».

73 — Zayendê Pronavan : Pronavan sê zayend hene : mê, nêr û nêtar.

Pronavên nêr — Pronavên nêr ew pronav in ko dikevin şûna navdêrên nêr. Lêzgîn got, wî got.

Pronavên mê — Pronavên me ew pronav in ko dikevin şûna navdêrên mê. Qeşemê got, wê got.

Pronavên nêtar — Pronavên nêtar ew pronav in ko dikevin şûna navdêrên her du zayendan û li gora zayendê navdêra ko dinimînin dikarin carine nêr û carina ji mê bêne hesibandin Lêzgin hat; ew hat. Qeşem hat; ew hat.

74 — Di zmanê kurdmancî de şeş texlît pronav hene.

1 — Pronavên keşîn
2 — Pronavên işarkî
3 — Pronva girêkî
4 — Pronavên pirsiyarkî
5 — Pronavên nebinavkirî
6 — Pronavên xwedîn

[1] Ev şikil helanî îro di hin cihên Kurdistanê de peyda dibe. Lê, bi tenê di gelejmarê de têle gotin. Yanî li şûna ko bibêjin « hespên Soro » « hespê di Soro » dibêjin û gelejmariya hespan bi « di » yê didin zanîn.

# Kitêbxana Hawarê

Hejmar:

1 — Rêzana Elfabiya Kurdî C. A. Bedir-Xan.
2 — Rupelnine Elfabê C. A. Bedir-Xan.
3 — Dilê Kurên Min Dr. K. A. Bedir-Xan.
4 — Bîyişa Pêxember. Bi Kurdiya dumilî; bi dîbaca C. A. Bedir-Xan
5 — Nivêjên Êzediyan bi dibaca C. A. Bedir-Xan
6 — Mektûb ji Mistefa Kemal paşê re
7 C. A. Bedir-Xan
1 — Mesela Kurdistanê Bazil Nikitîn
8 — Ji mesela Kurdistanê C. A. Bedir-Xan
9 — Elfabeya Kurdî Dr. K. A. Bedir-Xan
10— Xwendina Kurdî Dr. K. A. Bedir-Xan
11— Elfabeya min Dr. K. A. Bedir-Xan
12— Dersên Şerietê Dr. K. A. Bedir-Xan
13— Çarînên Xeyam Dr. K. A. Bedir-Xan
14— Proverbes Kurdes. Medhelokên Kurdî Lucy Paule Margueritte û Emîr. K. A. Bedir-Xan Paris - 1937
15— Le roi du Kurdistan. Qralê Kurdistanê. Emir K. A. Bedir-Xan û Adolphe de Falgerolle. Paris - 1937
6— Der Adler von Kurdistan. Eyloyê Kurdistanê. Prinz K. A Bedir-Xan û Herbert Örtel. Berlîn - 1937
17 — Der Schnee Des Lichtes. Berfa Ronahiyê Şihrên Kurdî Prinz. K. A. Bedir-Xan û Dr. Curt Wunderlich Berlîn - 1937

---

# Kiryariya Hawarê

| | | |
|---|---|---|
| Salî | 500 | Qirûşên Sûrî |
| Şeşmehî | 300 | Qirûşên Sûrî |
| Sêmehî | 200 | Qirûşên Sûrî |

Xwedî û gerînendeyê berpirsiyar: Mîr Celadet Alî Bedir-Xan. Şam—Sûriye
Directeur Propriétaire: Emir Djéladet Aali Bedir-Khan. Damas—Syrie

SAL 9
HEJMAR 35
ÇARŞEMB
12ÇIRIYA-PAŞÎN 1941

# HAWAR

ANNEE 9
NUMERO 35
MERCREDI
12 NOVEMBRE 1941

KOVARA KURDÎ ✶ REVUE KURDE

## TÊXISTIYÊN VÊ HEJMARÊ



ŞAM—1941
ÇAPXANA SEBATÊ

SAL 9
HEJMAR 35
ÇARŞEMB
12ÇIRIYA-PAŞİN 1941

# HAWAR

ANNEE 9
NUMERO 35
MERCREDI
12 NOVEMBRE 1941

KOVARA KURDÎ ✶ REVUE KURDE

## TEFSÎRA QURANÊ

Di rojên jorîn ên hejmartî de, piştî her nimêja ferz ev dia divê bête kirin.

Her diakarên Xudayê xwe bibin, jê bitirsin û bizanin ko honê vegerin û bigehin wî. Siûd û perişaniya we di roja pişdawiyê de, di destê Xuda de ye.

204 — Mirovek heye.... tê nik te û tu ştexaliya wî li ser işên dinyayê diecibînî û ew dibêje Xuda şahîdê min be, dil û zimanê min weke hev in, lê ew dijmineki dîn î dijwar e.

205 — Gava ji hafa te derdikeve, dûrî te dibe, dest bi fesadiyê û xirabiya zad û çêliyan dike. Xuda ji fesad û xirabiyê hez nake.

206 — Gava jê re tête gotin: Ji Xuda bitirse, ew nefsmeziniyê dike û dibe gunehkar. Dojeh têra wî dike.

Dojeh çi cihekî têrşerm û ezab e.

207 — Dîsa kesek heye, ji bona rizayê Xwedê canê xwe dide. Xuda bi evdên xwe re keremkar û piyar e.

208 — Gelî bawermendino..... Bi tevayî dest bi misilmanîtiyê bikin û ji dil û can dest jê bermedin, mekevin ser şopa Iblîs a xwar, mirov pê şermisar dibe.

Ew dijminê we ê xuya û xedar e.

209 — Heke hon paş dahatina ayetên Xwedê û sehkirina wan dudiliyê dikin, bizanin ko Xuda qadir û zana ye.

210 — Ji mişrikan pê ve her kes hêvîdarê emrê Xuda ye, yê ko di sihên ewrên tenik û di xunava qiyamekê de û bi melaiketan ve digehe me û ji wan pê ve dîsa her kes baweriya xwe bi wê demê tîne ko tê de mirov cezayê emelê xwe dibîne û her kes û her tişt vedigere ba Xudayê xwe.

211 — Pêxemberê min.... Ji lawên Israîl bipirse, bila ew bêjin, me ji wan re çend ayet û kitêb dane.... Lê yên ko bi ayetên Xuda serwext dibin û paşê mana wan diguhêrînin, ji wan re êşeke giran heye, Xuda di cezadanê de dijwar e û ew bi xurtî diêşîne.

212 — Jiyîna dinê ji kafiran re têrxeml dixuye û ew tenazê xwe bi mirovên bawermend ên belengaz dikin, lê di roja pişdawiyê de, cihê bawermendan ji yên wan bilindtir e. Xwedê ji kîjkî re dixwaze nîmeta xwe bêhisab dide.

213 — Di destpêka dinê da, mirov hemî miletek bûn û gotina wan yek bû, paşê li hev ketin, Xwedê ji wan re pêxemberin şandin, heta ko ji camêran re mizgîniya xweşiyê bidin û mirovên xirab bi ezêb bitirsînin û bi wan pêxemberan re kitêbin nazil kirin, heta ko li ser tiştên ko mirov li hev ne dikirin, pêxemberên Xwedê hikmê xwe li gora heq û edaletê bidin.

Ji Cuhî û Filan pê ve tu kes bextê xwe xira ne kir; her çend jî ji Cuhi û Filan re bi Tewrat û Incîlê hikmên Xwedê û emr û fermanên di wî xuyanî bû bûn, wan ji dexs û xirabiya xwe hikmên kitêbênXwedê, yên ko ji mirovan re şanî riya rastiyê didan, guhartin.

Lê Xuda ji kerema xwe, evdên xwe ên bewermend û dilpak, gihandin roniya rastiyê, her çend jî ew li ser vê rastiyê bi destûra Xwedê bi ya hev ne dikirin. Xuda ji kerema xwe her kesê ko dixwaze digihîne riya rastiyê.

214 — Ma we ji xwe re digot honê bê zehmet bikevin bihuştê? Yên berî we ketine tengiyeke giran, bela û nesaxî, belengazî û birçîtî zora xwe dida wan. Pêxemberê Xwedê û yên ko baweriya xwe bi wî anî bûn digotin: Kanî arîkariya Xwedê..... Bizanin.... Arikariya Xuda nîzing e.

215 — Ji te dê bête pirs kirin: Emê çi bidin û ji kê re bidin? Bêje wan: Ji malê xwe di riya Xwedê da ji dê û bav û mirovên di xwe re û sêwî, belengaz û rêwingiyan re bidin; herçî qenciya ko hon dikin, Xwedê pê dizane.

216 - Di riya Xuda de şer kirin ji we re bûye ferz û hon jê hez nakin; bizanin ko tiştin hene ko hon ji wan hez nakin lê li hev hatina wan ji bona qenciya we ye û hin tiştên din hene ko hon hejî wan dikin lê qewimandina wan bi kêrî we naye. Xuda pê dizane lê hon pê nizanin.

217 — Ewê ji te mesela şer û kuştinê di meha Remezanê de bipirsin; bêje wan: Di vê mehê de şer û kuştin guneheke mizin e. Lê vegerandina xelkê ji riya Xwedê û ji ziyareta Mescida-Heramê û jê derêxistina ehlên di wê guneheke hêj mezintir e; û fitne ji kuştinê xirabtir e. Gelî bawermendino.... bizanin ko kafiran, heke ji wan bihata, heta ko hon ji dînê xwe derkevin dest ji kuştina we bernedidan.

Heçî ji we ko dev ji baweriya xwe berdidin û dimirin dibin kafir.

Sewaba qenciya ko wan pêkanîne di dinê û axiretê de pûç û winda dibe û ew agirketî ne û tê de her dimînin.

218 — Yên ko baweriya xwe anîne û ketine riya mihaciriyê, û riya Xuda de şer kirine, ew hêvîdarên rehmeta Xwedê ne. Xuda efiw û tobe dide, Xuda piyar e.

219 — Ji te dê mesela şerab û qumarê dê bête pirs kirin.

Bêje: Vexwarina şerabê û leyistina qumarê gunehên mezin in, herçend ew bi kêrî xelkê bên jî.

Lê her hal gunehê vexwarin û leyistina wan ji nehfa wan pirtir e.

Û ji te bipirsin: Emê ji malê xwe di riya Xwedê da bi çiqasî bidin? Bêje wan: Ji mal û kedê xwe ên zêde di riya Xwedê de bidin, lê herhal bi awayekî bidin ko hon bi xwe piştre mihtacî xelkê nebin. Xuda hikm û ayetên xwe pêş we dike, heta ko hon bîrewer bibin.

220 — Di dinya û axiretê de bi ayetên Xuda serwext bibin. Ji te mesela sêwiyan wê pirs bikin; bêje wan: Gerandina îşê sêwiyan ji we re xeyr e. Heke malê we û wan têkilî hev dibin, bînin bîra xwe ko sêwî xweh û brayên we ên piçûk in, bi wan re camêr bin. Xwedê camêr û nekesan nas dike.

Xuda bixwesta bi netêkilbûna malê we û yê sêwiyan emir dikir, lê ew ji we re zehmet dibû, ji kerema xwe bi têkilbûna wan destûr da, ji ber ko Xwedê delal, zana û fêris e.

221 — Dot û keçên mişrikên ko hêj baweriya xwe ne anîne ji xwe re me kin jin.

Ji dot û pîrekên mişrikan, heke we hejî wan jî kir, mehrkirina jin an cêriyeke misilman ji we re dîsa bi xeyrtir e.

Heke we mîşrikek ecibandi be jî, heya ko wî baweriya xwe bi misilmanîtiyê ne aniye, dot û jinên misilman jê re mehr mekin.

Mehrkirina dot û jineke misilman ji evdekî misilman re jê bi xeyrtir e.

Jin û mêrên mişrik we digihînin dojehê, lê bi cihanîna emr û fermanên Xwedê mirov dikeve riya bihuştê, û bi destûra Xuda mirov ji gunehên xwe tobe dike û jê pak dibe.

Xuda ayet û hikmên xwe pêş xelkê dike heta ko ew pê bîrewer bin û dest ji gunehan bikişînin.

---

Ji bona Tefsîra Quranê K. K. û li hejmaêrn 27, 28, 29, 30, 31, 32 33 û 34 an fedkirin.

# HEDÎSÊN

## CENABÊ PÊXEMBER

REHMET Û SILAVA XWEDÊ LÊ BE

353 - Ko te seyê xwe şand û wi nêçirek ji te re girt, jê bibe û bixwe, lê heke seyê te çû ji xwe re nêçirek girt, wî jê mebe, ew rizqê wî ye.

354 - Parsekî heram e, meger ko izreke mezin hebe.

355 Jin ji parsûkê xwar hate afirandin, heke tu dixwazi wê rast bikî tuê wî bişkînini, bi sebr û nermiyê pê re bide bistîne.

356 - Gava cenaze derbaz dibe ji ber wî ve rabin. ( rabin ser xwe ).

357 - Wada xwe bîne cih, bawermend wiha dikin.

358 - Mirovên ko xelk ji xirabiya wan ditirsin di roja pişdawiyê de li ba Xwedê bê qedr û rûmet in.

359 - Sebr û dilnermî du xisletên hêja ne.

360 - Mirovê ko diyariyekê dide kesekî û paşê jê distine, mina seyek e ko vedirêşe û di pişt re tiştê ko vereşandiye dixwe.

361 - Gunehên mezintir ew in ko mirov mişrikiyê bike ango yekitiya Xwedê nas me ke, li dê û bavê xwe asê bibe, swindên derewîn bixwe û pêşberê qazî de pişti ko bi anina navê Xwedê sond xwariye derewan bike û pê bi qasî mûyeki jî be, ziyanê xelkê bike.

362 - Bi tenê bi malê xwe hon nikarin arîkariya xelkê bikin, bi exlaqê baş û bi gotinên şirîn ew razî dibin.

363 - Ko min di heqê meselekê de hikmê xwe da û xelet kir divê ji bîr mekin ko ez jî mirovek im, dikarim xeletekê bikim, lê ji ber ko min xelet kiriye heqê xwediheq winda nabe û yê ko dizane dawa wî ne heq bû divê jê bigere, tiştê ko mirov bê heq û rê dibe perçek agir e; êdî hon dizanin, bibin an berdin.

364 - Miletên berî we mehiw bûne ji ber ko gava mezinekî ji wan zilm û dizî bikir ew berpirsiyar ne dikirin û ko belengazekî tiştek dikir lê radibûn û diêşandin.

365 - Heçî di civatekê de rûniştî ne swindxwariyên hev in ( bextdayiyên hev in ) galgala ko di civatekê de hatiye gotin ji xalkê re me bêjin, ew tiştekî heram e.

366 - Berî ko bikevin mala yekî destûra wî bixwazin.

367 - Xwedê bi mirovên mihrivan tê rehmê.

368 - Ez jî yariyê dikim, lê dîsa rastiyê dibêjim.

269 - Ne işê min e ko dilê xelkê qul bikim û bizanim tê de çi heye.

370 - Tu û malê xwe tev da hon aidê bavê xwe ne.

371 - Heqê du kesên qels ji we re zehf heram e, heqê sêwiyan û heqê jinan.

372 - Di dinya û axiretê de kes ji min bêtir ne nîzikî Îsa kurê Meryemê ye, nav beyna min û wî da tu pêxember danehatiye, pêxember tev de ji bavekî ne, bi tenê diya wan cihê ye û dinê wan yek e.

373 - Ez ji mirovên ko gava belayek tê serê wan li serê xwe dixin û porên xwe dikişînin, cilên xwe diçirînin û diqetînin, bi dengekî bilind ax û zarînan dikin û digirîn pak û bêrî me.

374 - Yê ko sêwiyan dihewîne di bihuştê de bi min re ye.

375 - Îşê dinyayê hon ji min çêtir dizanin.

376 - Vexwarina ko heke we jê pir vexwar serxweş dibin ji we re heram e.

377 - Pir me bêje, pir me kene, ji feqîr û belengazan hez bike, bi wan re rûne, xêrxwazê wan be û arîkariya wan bike; zehmet be jî her rastiyê bibêje, qedrê mirovên di xwe bigire, ew ji te bigerin jî, tu ji wan me gere, gava dieniri bi xelkê re mepeyive, kêmaniyên xwe bizane û bi kêmanîya xelkê mijûl me he, paşgotiniya nav û hevalên xwe me ke, bi gotin, û rabûn û rûniştina xwe hevalê xwe aciz me ke, bei ko bi te bikeve swind me xwe.

478 - Qedrê ciranê xwe bigirin û wan aciz me kin.

379 - Di ziwaca xwe bi pezekî ji be dawetê bike.

380 - Ezê ji nimêj, rojî û zekatê çêtir tiştekî rê we bidim? Ew li hev anîna mirovan e; bi şer û pevçûnê xelk winda dibin.

381 - Ezê rê bidim we, mêrxas û egîdê we kî ye? Mêrxas û egîd ew e ko gava dienire li cihê xwe giran e, û bi nefsa xwe dikare.

382 - Ji gotin û kirina ko di dawiyê de tuê poşman bibî jê bigere.

383 - Ji gotin û emelên ko guh jê diqehire dûr here.

384 - Di mesela diyanetê de pir kûr ma jon, miletên berî we pê dinê xwe winda kirine.

# DÎWANA MELÊ

Di hejmara Hawarê a 33an de me bendek li ser klasikên xwe belav kir û tê de qala Melayê Cizerî jî kir. Îro em dest bi belavkirina dîwana Melê dikin. Dîwana Melê herwekî me di wê bendê de goti bû beriya niho jî bati bû çap kirin, û ne carekê, lê çend caran. Çapa me a îro ji wan çapan geleki bi ferq e. Ev diwan berê bi tipên erebî dikete çapê. Îro bi tîpên me bi xwe, bi tîpên kurdmancî dê bête çap kirin.

Qedrî begê Cemîl paşa himet kiriye û dîwana Melê ji serî heta binî wergerandiye tîpên kurdmancî, yanî ew ji nû ve bi tîpên kurdmancî nivisandiye. Xwedê jê razî be û wî di vê riya xebatê de payidar bike.

Dîwana Melê di nav kurdmancan, ne maze di nav mela û feqehan de gelek nas e, û gelek nivîştên wê ên destnivis hene. Me hêvî ji xwendevanên xwe heye ko nivîşta Qedrî begî deynin ber nivîştine din û ferqên ko di nav nivîştan de bibînin ji me re bidin zanîn. Em wan di Hawarê de belav dikin û piştî ko dîwan bi temamî qediya em li van ferqan hûr dibin û ji wan nivîştеke tekane ditînin pê.

Mela mitesewif e. Ji lewre şihrên wî bi çend awan dikarin bêne mana kirin. Xwendevanên me ji vî awirî ve ji dikarin bixebitin û awayê manakirina xwe ji, ji me re binivîsînin.

## — 1 —

Niwaya mitribê çengê fixan avête xerçengê[1]
Werin saqi heta kengê neşoyi dil ji vê jengê
Heyata dil meya baqî binoşin da bi miştaqî
«Ela ya ey-yihes saqî edir ke'sen we nawilha»
Ko katib dêmê cedwel ket, şikeste xet mi-
[ selsel ket
Ji yek herfan mifesel ket, kî ye vê mişkilê
[ hel ket
Dizanî, rûd û ûd ewel çi tavêtin sirûd ewel
«Ko eşq asan nimûd ewel, welê iftad
[ mişkilha»
Ji mihra wê şefeqse'dê, şêrînle'lê şekerwe'dê
Dinalim şibhetî re'dê ecêb im lê ji vê ce'dê
Kî dil ra tab herçîneş, bi kufrê mîbered dîneş
« Ji tabi ce'dê mişkîneş çi xûn iftad der
[ dilha»
Di vê tavê di vê xanê me eyş û eymeni kanî
Kesî destet ji dewranê, nihalek vê gulistanê
Deraxûşeş çi mey ared kî ez dil caneş
[ bispared
«Ceres feryad mîdared ki ber bendîd meh-
[ milha»
Bi quranê bi ayatê eger pîrê xerebatê
Bibêjim secde bin latê, mirîdê wî dibin qatê
Mirîd er bê beser nebiwed zi fermaneş be
[ der nebiwed
«Kî salik bê xeber ne biwed, zi rah û resm û
[ menzilha»
Ji vê zilmat û deryayê, ji mewcan qet xeber
[ nayê
Şikesti keştiya bayî, ecaca wê şefeq dayê
Ji herfan mah û salê ma, ne hat der şiklê
[ falê ma
«Kuca danend halê ma, sebikbarani sahilha»
Me ra ewel ji pir xamî, kişand axir bi bed-
[ namî
Ji rengê Se'dî û Camî, ji şihret pê hesan amî
Bi deng û bang û awazî, dibêjî nexmeya sazî
«Nihan key maned an razi, kezo sazend meh-
[ filha»
Ji Hafiz, Qutbê Şirazi, Mela î fehm er biki razî
Bi awaz û ney û sazê, bibî her çerx
[ perwazî
Tezed min hibiha sefwa, bihi ehlil hewa
[ neşwa
«Meta matelqe men tehwa, de'e-dinya we
[ ehmilha».

## — 2 —

Ismê te ye mektûb di dîwana qidem da
Herfek qelemi ilmi bi teqwîmi reqem da
Eşkal û xet in, daire û niqteyi eşqê
Ew neqşmisal in di xeyalati edem da
Mîm metle'i şemsa ehed ayîne sifet kir
Lamih ji ereb berqi li fexari ecem da
Da şahidi esma bi hemî wechi binasin
Yek mesti semed kir, bi yekî neqşi senem da
Yek girtiye zilfê, û yeki xal nimayi
Ayîne bi Iskender û cam bi Cem da
Erwahi miqedes şevi qedra te dixwazin
Nûra te ye misbah di qendila herem da
Da weqti liqayê bi te hey bin di beqayê
Min neqdi dil û can di fenayê bi selem da
Yaqûtfiroşan di kef elmasi şikestin
Ew sefheyi elmas ko neqaşi qelem da
Yareb bi çi rû leb bi seneya te kişayim
Sibhaneke len ihsiye fi şanike hemda
Minet ji Xuday ko bi ehdê xwe Melayî
Eksîrê xem û eşqê ne dinar û derem da.

## — 3 —

Meşateyî hisna ezel çengalî zilfan tab da
Da eşq hilbit pê li pêl qelbê Melê celab da
Hisna hebîb û litfû yar avête dil eşqa xedar
Lew selb kir jî ixtiyar, wê hisnê ev
[ icab da
Min dî seher zilfên di mest, hatin sema ihram
[ best

[1] Birca Merix

Çûn secdeya xalê bi qest, lew haciban mih-
[ rab da
Rûh û rewanê min hebîb, dîsa bi telbîsa [1]
[ reqib
Rencîde kir miskîn xerîb, terka dilê ehbab da
Mehbûb bi reyhan û gulav, ker kir li min
[ cerg û hinav
Zehra hilahil bû di nav, lew saqiyan celab da
Wan dest û zend û saidan, mey daye şêx
[ û zabidan
Mest im ji çeşmê şahidan, wî nêrgiza sîrab da
Miskê reşandin ez dibêm, wan Hindiyê xa-
[ lan bi dêm
Lê xetê reyhan li dêm, katib ji nû îrab da
Nazikqeda nûrînbeşer, ew bû li min neq-
[ şi beser
Dinya xeyali her seher, nav dîdeyî bêxab da
Ew tiliyên nazik reqîq, pir da me fincana eqîq
Ew badeya nûrin rehîq, minet bi min webab da
Da xef nebi pêjna firê, mey rête şehkasa surê
Minet ko îro dêmdur e, dîsa şeraba nab da
Mey hate fincana sedef, ki dê vexwit êdî bi xef
Saqî bi nay û çeng û def ferfûriyan mehtab da
Îd e hebîbê nezre lê, bang da bû qurbana Melê
Yareb bibînim rojhelê, sikîn di dest qe-
[ sab da

— 4 —

Muxbeçeyên meyfiroş her seherê tên sema
Badexwaran nûşenûş mane li dorê çema
Hin gul û hin enber in, hin şîrîn û esmer in
Hin guher in daneyî misli siheylî sema
Hin zerî ne pir sur in, surperî ne dêmdur in
Min ko di çerxê we dî, sebr û qerar im ne ma
Sebr û qerar îm ko bir cerg û ceger hûr dikir
Zilmê wiha kê dikir can dibir û dil teba
Can û dilê min ew e hûriweşê min ew e
Padişahê min ew e, ez li derê wî geda
Yarî ko dî em geda dest bi dest me da
Em bi semayî birin reqs û sema jî we ma
Gote me durdaneyê em ji te û tu ji me yî
Lew bi heqîqet yek in, mesele bi şibhe ma
Bade me noşî ji dest, çûme ji xew mame mest
Qetre bi behrê giha, behir bi eynî xwe ma
Gûşî bi amî mede terka midamê mede
Ekserûhin fî zema exlebûbin fî ema
Herf ji yek bûne fesil, ger bibêrî wan bi esl
Herf dibite yek xetek, xet ko ne ma niqte ma
Wehdeti mitleq Mela, nûr e di qelban cela
Zor divê vê meselê ehlê dilan şibhe ma.

Melê qesîda xwe a pêşîn bi tezmîna heşt misrahên Hafizê Şirazî pêk aniye. Me ew misreh xistine nav dunikan û bi vî awayî ew ji yên Melê veqetandine. Hafiz jî bi xezela ko ev heşt misreh tê de ne dest bi dîwana xwe kiriye. Heke xezala dîwanekê a pêşîn besmela wê dîwanê bihata hesibandin, Mela nivê besmela Hafiz kiriye besmela dîwana xwe

Ev xezela Hafiz gelek bi nav û deng e. Ji lewre û bi vê hêncetê me dil kir em vê xezelê ji xwedevanên xwe re ber pê bikin. Eve xezel:

الا یاایها الساقی ادر کأساً وناولهـا
که عشق آسان نمود اول ولی افتاد مشکلها
ببوی نافه کاخر صبازان طره بکشاید
زجعدزلف مشکینش چه خون افتاد دردلها
بمی سجاده رنکین کن کرت پیرمغان کوید
که سالك بیخبر نبود زراه و رسم و منزلها
مرا در منزل جانان چه امن وعیش چون هردم
جرس فریاد می دارد که بربندید محملها
شب تاریك وبیم موج و کردابی چنین هائل
کجا دانند حال ما سبکباران ساحلها
همه کارم زخود کامی بیدنامی کشید آخر
نهان کی ماند آن رازی کزو سازند محفلها
حضوری کرهمی خواهد ازو غائب مشو حافظ
متی ماتلق من تهوی دع الدنیا واهملها

Heke me ev xezel bi firehî bi mana kir Hafiz dibêje:

Meyger! bi agahî, piyanê di civatê de bigerîne û şerabê bide civatrûniştiyan.

Eşq û evînî di destpêkê de hêsanî xuya kir, lê gava em gihaştin ê, me dit ko ew xurt û dişwar e.

Sira bayê sibê biskên yarê ji bev dike û jê bihnine xweş belav dibin.

Ji xelekên guliyên wê ên bi misk, xwîn kete dilê dilketiyan.

Heke pîrê mixan [1]gote te, guh mede kurt û pistan, secadê jî bi şerabê bi reng ke.

Ji ber ko pîrê terîqetê ê karnas bi aylnên vê menzilê dizane û ji wan ne bêhay e.

Di civata yarê de, ji min re tu bistehî û rahetî nîne, ez nikarim feriqet bim û lê rûnim.

Ji ber ko naqûsa rewingiyan bang dide û dibêje: kar bin û barê xwe girêbidin.

Belê, em çawan ewle bibin ko ba û bahos li me rabûye, di nivê behrê de keştiya me li ber gêrên kûr sekinî ye.

---

[1] Pisîtî, fesadî

[1] Mix bi mana zerdeştî, ateşperest an mecûsî ye. Bi mecazî, ji meyger re jî dibêjin. Mixpeçe lawikê meyger. Pîrê mixan ji bi mana mezinê terîqetê ye.

Lê xelkê peravan ên barsivik bi halê me nizanin.

Karê min di dinyayê de, ji xodgamiyê ez avêtim bednamiyê; yanî min her û her ji ya xwe kir û pê bednav bûme.

Ma kengê ew sir veşartî dimîne ko jê civatan saz dikin, yani sira ko di civatan de tête gotin veşartî namîne.

Ey Hafiz, heke te bistehî divêtin, terka yar û armancê mede û li wan guhdar be.

Û gava dixwazî xwe bigehînî mehbûbê dilan terka dinê û her tiştên wê bide.

Misreha vê xezelê a pêşîn, ya ko bi erebî ye, ne ya Hafiz e. Ev misreh ya Yezîd kurê Miawiyê ye. Di heqê vê misrehê de çîrokek heye. Dibêjin ko xelkê gazind ji Hafiz kiri bû û goti bû è: «Ya Hafiz te di nav şairên ereb de ji Yezîd pê ve kesê din peyda ne kir ko jê misrehekê bigirî û pê dest bi dîwana xwe bikî. Ma tu nizanî ko Yezîd kafirek e». Hafiz kenî û li wan vegerand û got: «Ma hon jî nizanin ko malê kafir ji bawermend re helal e».

* * *

Me ji xwendevanên xwe hêvî kir ko nivîşta Hawarê û yên xwe deynin ber hev û ferqên ko tê derînin ji me re bidin zanîn. Bi me re jî nivîşteke dîwana Melê heye. Me her çar qesîdeyên ko di vê hejmarê de belav dibin, danîne ber nivîşta xwe û ferqên jêrîn dîtine:

Qeşîde: 3. misreh: 12 û 13.

Li gora nivîşta Hawarê:
Mest im ji çeşmê şahidan, wî nêrgiza sirab da
Miskê reşandin ez dibêm, wan Hindiyê xalan hi dêm

Li gora nivîşta min :
Mestî bi çeşmê şahidan, ew nêrgiza şirab da
Miskê reşandî ez dibêm, j'wan niqteyan hin bûne kêm.

Qesîde: 3. Misreh: 22, 23 û 24.

Li gora nivîşta Hawarê:
Saqî bi nay û çeng û def, ferfûriyan mehtab da
Îd e, hebîbê nezre lê, bang da bû qurbana melê
Yareb bibînim rojhelê, sikîn di dest qesab da.

Li gora nivîşta min:
Saqî bi çeng û nay û def, ferfûriyan mehtab da
Îd e, hebîbê nezre lê, yareb bibînim rojhelê
Yan dê bi qurban bê melê, sikîn di dest qesab da.

Qesîde: 4. misreh: 2 û 3

Li gora nivîşta Hawarê:
Badexwaran nûşenûş mane li darê çema
Hin gul û hin enber in, hin şîrîn û esmer in

Li gora nivîşta min:
Badexwaran nûşenûş mane li dorê cema
Hin gulî bûenber in, hin di şîrîn esmer in.

* * *

Nivîşta ko bi min re ye Mela Evdiselam ew di sala 1322ê hicrî de nivîsandiye. Mela Evdiselam cizerî û alimekî zor e. Mela Evdiselam gelek bi dîwana Melê mijûlê bûye û zehf nivîşt li ber nivîsandine. Û dibêjin ko Evdiselam qene jî zane-Melê mana bike. Ji lewra nivîştên ko ewî nivîsandine gelek biqîmet û mihteber in.

Mela Evdiselam di heqê tarîxa wefata Melê de û bi zmanê erebî haşiyeke kiçik li ber vê nivîştê nivîsandiye û gotiye: Tarîxa wefata Melê ne xuyaye. Lê divêt berî an piştî siltan Fatih emrê Xwedê kiri be. Li gora qesîdeyên wî Mela di pey Fatih re çûye rehmetê.

C. A. B.

## MELIK Û KOÇER

Melik Xelîl hebû; melikê Hesenkêfê bû. Hesenkêf bajareki kevnare ye, li ser Diclê, yani çemê Diyarbekrê, û di ser Cizîra Botan re ye.

Rojekê melik Xelîl û leşkerê xwe çûne rav û nêçîrê. Birek kêvi rakirin. Melik beranek jê veqetandek û (melik li hespeki siwar e) da ser pişta beranê xwe û ew gihande gelikî kûr.

Di wî geliyi de şivaneki koçeran li ber pezê xwe bû. Melik beranê xwe winda kir. Vegeriya cem wî şivanî, silav lê kir. Şivan silava wî venegerand. Melik enirî û got:

— Herçî şivan in wekî keran in, guhên wan li ser kar û berxan in, ne li ser silava camêran in.

Şivan got: Ew mirov ker in ko li şolê xwe miqate nabin û rav û nêçîr ji xwe re kirine kar.

Melik bêtir enirî û got: Şivano tu şivanê kê yî, û navê te çi ye?

Şivan got: Çi şolê te pê ye; tu li şolê xwe pirsê bike.

Di wê hingê de leşkerê melik dor lê girt û silava padeşahiyê lê kirin. Melik ji wan re got : Vî teresî bigirin, kuştina wî helal bûye.

Şivan got: Ya melik Xelîl ! destûra peyivê bide min.

Melik destûr da ê. Şivan çîroka baz û çûk ji xwe re kire behane û got:

| | |
|---|---|
| Min bihîst ko çûkekî | Rokê gote bazekî, |
| Ey padişahê teyranî | Hero karê te seyran. |
| Tu guh nadî şolê xwe, | Serbest nakî colê xwe. |
| Bi ceng û fir û perwaz, | Ta ko nebin belengaz. |
| Baz enirî wekî şêr | Xwe çim kire serbejêr. |
| Çûk ket nava pencên baz, | Reben kir qîr û awaz. |
| Çûkî gote bazê pîr: | Te ez girtim bûm hêsîr. |
| Gote bi qîr û zarî: | Ger min bixwî tu karî, |
| Belê zikê tey mezin, | Qe têr nabe, j'laşê min. |
| Bazê me çûk azad kir, | Bi tiştekî xelat kir. |
| Xelat kir bi malê xwe | Jê re xweş kir riwê xwe. |
| Xem û kulên çûk ne man, | Firî çû ber bi ezman. |

Wê hingê Melik Xelîl xelateke mezin li şivan kir û kêfa xwe gelek jê re anî. Ev çîrok ji Melik re bû şîret û Melik jê girte ibret.

HESAR: 9 - 4 - 1936 DILISTAN

# LÊNÎNGRAD

Di nav bajarên ûris de piştî Moskoyê Lênîngrad e. Îro di dora Lênîngradê de şerine xwîndar çêdibin. Di radyowên dinyayê de her û her navê Lêningradê tête gotin. Bi vê mêncetê me dil kir hin tiştan li ser Lêningradê, ji xwendevanên Hawarê re bidin zanin.

Mintiqa Lêningradê, bi hatinên xwe ên tebihî û madenî ji her derê Rûsyayê hêjatir e. Ji lewre dewletên dorê hergav çavên xwe berdidan vî welatî. Di pêşiya sedsala (esir) sêzdehan da ordîwa Îsvêçê gihaşti bû heta çemê Nêva Lê ûrisan isvêçi şkênandin, ew bi şûn de vegerandin û avêtin derveyî tixûbên xwe.

Lê Îsvêç ji wî erdê dewlemend ne digerya. Di pêşiya sedsala çardehan de isvêçiyan dîsan dirêjî welatê ûris kir û ketin erdê ûris û berê xwe dan bajarê Novgorodê. Lê isvêçî vê carê jî şikestin û vegeriyan welatê xwe.

Di sedsala hevdehan de isvêçiyan bi arakariya poloniyan zora ûris birin û ketin erdê Lêningradê, û keleha Kronştandê ava kirin. Ev keleh îro di behra Baltikê de wargehê stola ûris e, û di pêşberê Lênîngradê de ye. Îsvêçî sedsalekê li hire man û hatinên vî welatî xwarin.

Di sala 1703an de carê ûrisan ê bi nav û deng, Pêtroyê mezin, isveçî ji welatê xwe derêxistin. Heta hingê bajarê Lênîngradê nîn bû. Pêtro rabû li wê derê li ser çemê Nêva bajarek ava kir û nisbet bi navê xwe ve navê Pêtresbûrgê lê kir, û payîtextê ûris ji Moskoyê guhaste vê derê. Navê vî bajarî du caran hate guhartin. Di sala 1914 an de bû Lênîngrad. « Burg » bi elmanî « Grad » bi rûsî ye, û her du ji bi mâna hirc û bajar in.

Di sedsala nozdehan de Lêningrad gelek pêş ve çûye û bûye merkezeke sinahî. Bolşevîkî jî di vî bajarî de rabû û di sala 1919 an de Lênîn zora eskerên çar birine û ew digel malbata çaran ji Lênîngradê derêxistine û ala sor çikande ser seraya çaran.

Ji awirê sinhetê ve Lênîngrad ji Moskoyê ne kêmtir e. Di sala 1939an de mixdarê emeleyên ko di febrîkeyên Lênîngradê dixebitin (1200000) peya bûn. Di mintiqa Lênîngradê de ji febrîkeyên selîloz û elûminyom pê ve her texlît destegahên sinhetê hene. Hin febrîkeyên çek û posatan jî peyda dibin. Nifûsa Lênîngradê (3191000) e. Di salên paşîn de di dora bajêr de bi tene şêst febrîkeyên kewçûkê hatine çêkirin.

# PERÎŞANÎ

Li taxa Mihaciran, ji oda xwe temaşa bexçeyên Şamê dikim. Ji nişkê ve zozanên Kurdistanê ên bilind, bi dar û avên cemidî tên bîra min. Ez xwe li wê derê, li ser kanîkê, li bin daran dibinim. Doraliyên min giş hêşînayî ne. Ji bihnên xweşik pozê min vedibe û singa min bildibe. Ji nêzik, weke nalînê, dengê blûrekê têt, serê xwe radikim: şivanek pezê xwe tîne avê. Çiqas bi kêf im, çiqas bextiyar im, bihuşt! bihuşteke rastîn.

Şivan li blûra xwe, hin bêtir bi keser dixe; laşê min giş dilerize, xwe ji bîr dikim.

Gava çavên xwe vedikim, li ber xwe du jendermeyên romî dibinim. Çavên wan sor in û ji rûyê wan lanet dibare, yek ji wan, tifinga xwe ji milê xwe radike, bi dengekî hişk û bi zmanê xwe, ji şivan re dibêje: Bes bizire, ka ji me re berxekî bîne.

Şivan fehim nake; şaş û bi tirs li wan dinêre. Jendermeyê din dikeve nav pêz û li berxekî qelew digere. Şivan razî nabe, lê bi zimanê wan nizane. Bi destê xwe işaretan dide û dibêje: « Meke! berde! berde! » jendermeyê din tifinga xwe hildike, dirêjî şivan dike, dibêje: « Blûr qey ne bes bû, tu bi kurdmancî jî dibêjî » û berdide. Şivan bê deng dikeve erdê û pez belav dibin. Xwînxwaran bihuşt kirine dojeheke dijwar.

Bi girîn van deran berdidim û têm Cizîrê. Wexta peleyiyê ye. Her der zer, zer e. Li zeviyan, ji dûr ve wek heywanan, tiştên bi can, li ser çar lingan dilivin. Nêzîkî wan dibim, bi qelafeta bedewiyan însanan dibinim Lê bi kurdî dipeyivin; laşê wan ê tazî û spî, nerm û xweşik li ber tava Cizîrê şewitî û reş bûye. Ji rûyê wan xwêdan dilop dike. Lê wek makînê dişixulin. Bi wan re jin û zaro jî bene. Pîrekan, zaroyên xwe ên serşîr avêtine erdê, nav toz û axê. Mêşan rûyê wan girtiye. Ji cilên wan ên genî bihnên pis tên.

Zaroyên deh donzde salî arîkariya wan dikin. Nîvtazî ne, pêxwas û serqot in. Ji tavê, çavên wan bi zor vedibin. Bê mekteb û xwendin in!

---

Ji milê din Lênîngrad bajarekî ilm û zanistiyê ye. Tê de 58 ûniversîte, 41 mozexane û 140 civatên her texlît zanistiyê hene.

Piştî mirina Lênîn navê bajêr bi temamî guhartine û kirine Lênîngrad.

SMAÎNÊ SERHEDÎ

Li dora xwe dinêrim: darek nine. Lê xaniyên wek koxên mirişkan, dibînim.

Diçim rex wan. Ji deri ve serê xwe xwar dikim, diçim hundir. Alikî, mezeleke tarî, bê pencere û nizim; li quncikekê nexweşek dinale, li alîkî jî kerek dizire. Bihna min teng dibe. Zû xwe tavêjim derve.

Ev e hal û jiyîna wan. Çandina wan çi ye? Çend elb genim û ceh. Bêtirê wan jî cotê axan, an xwedî erdên biyanî dikin. Piraniya wan, ji niha de malê xwe bê qîmet firotiye. Ji ber ko birçî û tazî ne, belkî jî deyindar in. Ên mayî, li pehizê, ji destê tica rên bê wijdan, wê çi bikişinin.

Zilma memûr û jenderman jî li ser e. Şêx jî hene: Piştî paleyî û rakirina bênderan deynê şêxan dimîne.

Roja cejnê ye. Ez van gundiyên reben, belengaz, cahîl, bê mirşidên rastîn û xwedî wijdan, li cem şêxê wan dibînim. Cilên wan peritî ne, hin pêxwas in, û ji dûr hatine.

Tên, ji dûr ve destqifilî, serxwar, li ber şêx disekinin, paşê bi dor diçin secdeya wekîlê Xwedê, wekîlê pêxember, û dergevanê bibuştê. Lingên wî, destên wî maçî dikin, tiştekî didin ê û bi fehît, bi tirs û telaş li ser çongan, pêlepaş dimeşin û derdikevin.

Dinê û bihuşt tev de kar kirine. Niho ewê herin mal, û çend mehan, di koxikên xwe de, nanê tisî û savar bixwin û ji dinê bê xeber li benda bihurê bin. Bextiyar in!

Vedigerim Şamê, serê xwe ji pencerê derdixînim, ji qesrên delal dengê radyowan û perwaneyên elektrîkî tên. Li ser cadeyên pak tremway dimeşin. Li ezmên balafirek digere. Bê hemdê xwe keseran dikişinim û ji xwe re dibêjim: nezanî .... nezanî .... nezanî .... perişanî.

Şam: 10 Tirmeh 1941 NÛREDÎN ÛSIF

# SOND

Rojine derbasbûyî ... rind nayê bira min. Dersxana me yektebeq û nesiwaxkirî bû. Gava deriyê kûçê dihate vekirin dehlîzeke teng û tarî û paşê hewşeke bêdar, rût xuya dikir. Di hewşê de Bermîleke avê, zingarî hebû ko me bi ava wê destmêj digirt.

Keçik û lawikan bi hev re dilîstin, bi hev re dixwendin.

Xoca mezin jin bû; bejindirêj, piştxwar û hebek mejîçelqiyayî. Xocê biçûk kurê xoca mezin bû, hêj zarok bû.

Ez, li dawiya zarokan gişan rûdiniştim ko darê xoca mezin negihêje min. Ji ber vê yekê navê min bû bû « Rovî ». Ji xwe di dersxanê de her zarok, li ser awayê tebîet û şiklê wî, navekî zêde lê hati bû kirin. Gurê har, Mişkê kewarê, Gabelek .....

*
* *

Di dersxanê de awakî cezayê hebû, felaqe. Heta keçikên mezin jî xwe ji felaqê xelas ne dikirin. Kesê ko ji felaqê ne tirsiya û jê ne recifiya tine bû. Ewê ko cirma wî biçûk ba, xocê biçûk bi çend şimaqan û xoca mezin bi çend daran canê wî ditevizand û serê wî diwerimand.

Ji aliyê lêxistinê para min ji gişan kêmtir bû. Bi tenê carekê xoca mezin ji ber «derew» kê guhê min pir zêde kişand û ez êşandim Heta çend rojan sorbûn û êşa guhê min ne çû .. Digel vê qasê tu qebaheta min tune bû û min « rast » gotî bû ....

Rojekê, zarokekî bilbiloka bermîla nimêjê şikandi bû. Her du xocan dixwest bizanin xwediyê vê cirmê kî yê? Yê ko ew şikandi bû zarokekî biçûk, ziravok, nexweş û bêcan bû ... Min ew ji xoca mezin re got. Xocê dikira ew bavêta felaqê Wî jî înkar dikir. Wê gavê zorokeki din hate ba xocê û got: « Yê ko bilbilok şkandiye ez im û ne Misto ye». Û xwe li ber felaqê dirêj kir. Hingî darê xoca xanimê hilat û daket; zarok bi kel û girî, bi ax û waxin bist, si dar xwarin. Paşê xoca mezin li min vegeriya û got: « Te çima derew û bêbextî li hevalê xwe kir? » Wê gavê guhê min çend caran û wer kişand ko ez ji erdê bilind dibûm ....

Ez giriyam ... giriyam ... çima ko min derew ne kiri bû. Belê, yê ko bilbilok şikandi bû Misto bû; û min ew bi çavê xwe dîti bû û paşê min ji xoca mezin re goti bû.

Piştî ko em ji dersxanê belav bûn, min ew zarokê ko derew li xwe kir, û xwe li ber felaqê dirêj kir, dît û min bi destê wî girt û ji wî pirsî:

— Te çima ez derewker derêxistim û te bi ser de derew li xwe kir û bê sebeb te xwe da ber kotekan; te bilbilok ne şikandi bû.

Ewî got: Belê, min şikandi bû ....

— Na, te ne şikandi bû, Misto şikand; min ew bi çavê xwe dît û paşê min ji xocê re got.

Êdin nikari bû rastî veşarta, li rûyê min nêrî û qedereki ma û paşê ji min re got: « Heke tu sond dixwî ko ji xocan re nebêjî, ezê rastiyê bêjim ». Min jê re sond xwar, ji min re bû bû meraq. Ewî got:

— Belê, bilbilok Misto şikandi bû, ez jî pê dizanim, lê ew pir bêcan e, nexweş e, tu nabînî, ma dikare xwe li ber felaqê bigre.

— Te çima li dewsa wî kotek xwar?

— Çima? Çima ko min bi wî re sond xwariye. Ew îro nexweş e, ez rehet im, min ew xêlas kir

— Sond çi ye?

Ewî got: Ma tu nizanî? Min got: Na. Hebek hi dûr ket û got:

— Em xwîna hevdû dimêjin û bi hev re sond dixwin. Yên sondxwarî dibin xwînbirayên hev û heta mirinê bi her awî arîkarî û alîkariya hev dikin.

Paşê, min bala xwe da, gelek zarok bi hev re sond xwarî bûn.

Rojekê, min ev bi çavê xwe dît. Xocê biçûk, li ber bermîla avê destmêj digirt. Xoca mezin, paşiya wê li me bû; nimêj dikir. Du zarokan bi kêreke dardestî, milên hev diqelişand; dilopên xwîna sor di cihê birînkirî didan û dimêtin, û bi hev re sond dixwarin.

Sondxwarin û xwînbiratî ji min re bû bû meraq. Xwînbirakî min heba, gava xoca mezin guhê min dikişand, ewê xwe dida ber min û ne dihişt ko guhê min bête kişandin û carina jî ez ji felaqê xelas dikirim.

Di nav dibistanê de min xwe bi tenê didît. Hinek hevalên min hebû. Lê me bi hev re sond ne xwarî bûn û em ne bû bûn birayên hev.

Rojekê min daxwaza xwe ji diya xwe re got; min ji wê re çîroka sondxwarinê da zanîn. Diya min rûyê xwe bi min re tirş kir û got: « Nebe ko tu dîn bûyî; ez wisan zarotiyan naxwazim ».

Lê min guh ne da ê; min ev tişt « sondxwarin » da bû ber çavê xwe. Min dixwest ji nav hevalên xwe xwînbirakî qenc bibijêrim. Rasthatineke xweş, ji min re ev heval bexş kir. Rojên înê zarok giş li nav bexçê mala me diciviyan. Hetanî êvarê me bi hev re dilist. Hevalekî min hebû ko ji wî bêtir navê wî bi min xweş bû. Ewî gelek caran pişta gurê har datanî erdê. Gurê har, navê ko Xoce xanim li « Cemo » kirî bû. Cemo bi rastî mîna gurekî har bû; canê gelek zarokan dişewitand

Sindik Havînê, her rojên înê, bi xwe re destek darên bihê dianî. Me ji van daran ji xwe re hesp çêdikirin û em bi hev re derdiketin cirîdê.

Rojekê ji rojên înê dîsa Sindik bi xwe re gurzek dar anî bû. Min ji xwe re yekî dirêj û rast bijart û bi kêreke tûj min qaşilê wî diqeşart û ji hespê xwe re guhik û pozik derdixistin; min hespê xwe çêdikir.

Sindik û hevalên din li benda kêra destê min bûn, da ko wan jî mîna min hespên xwe çêkirina Nîzanim çawan bû, carekê min dît kêra destê min, ji nav qaşilê darê çerixî û xwe gihand tiliya min a biçûk ya destê min î çepê û ew birîn kir. Xwîneke bi av û sor jê herikî. Di wê gavê de tiştek hate bîra min. Sond xwarin. Min êşa tiliya xwe ji bîr kir û ji Sindik re got:

— Rabe Sindik, destê min hazir e, tu jî destê xwe birîn bike, da ko em bi hev re sond bixwin û bibin xwînbirayên hev.

Sindik hebek dama, bi çavên xwe ên reş li erdê belek nêri û got: Ma dibe wisan, ji bo xwînbiratiyê divêt em xwîna zendên hev bimêjin.

Min got: Çi xem e lo!.. ma ne xwîn e, ba ji dest, ha ji zend.

Sindik got, baş e, û kêr ji destê min girt û zendê xwe vemalt û birî, heta hebekî kûr jî birî. Xwîna wî hewqas tîr bû ko ne diherikî; ew bû dilopek û rabû. Me xwîna xwe tevlî hev kir. Berê min mêt; tiştekî şorgerm bû. Paşê wî xwîna tiliya min mêt.

* * *

Nayê bîra min. Di pişt re çiqas zeman derbas bû, nizanim . . . mehek, salek. Min ji bîr kirî bû ko ez û Sindik bûne xwînbirayên hev. Dîsa em bi hev re diçûn dibistanê, û em bi hev re vedigeryan. Rojekê, dinya gelek germ bû Xoca mezin di nîvê rojê de, em serbest berdan, mîna rojên pêncşembê . . , Ez û Sindik hêdî-hêdî vedigeriyan mal. Min destmala xwe danî bû ser serê xwe. Xwêdan ji eniya me diherikî, em li ser rêke biçûk û teng dimeşiyan. Ji nişka ve kûçikekî reş û mezin derket peşiya me. Li pê wî çend zilam bi darên xwe bi dû keti bûn. Ji dûr ve deng li me kirin û gotin:

— Xwe bidin alî, ewê bi we bigre . . .

Em tirsiyan û şaş man. Min got, eman em birevin. Çavên kûçik sor bû bûn; mîna agir dibiriqin. Kûçik nêzîkî me bû bû. Sindik got, tu xwe li paş min veşêre, û xwe da pêşiya min. Kûçik dirêjî wî kir; Sindik jî xwe avête ser wî. Mîna ko bi navê bileyizin; destên xwe di nav pişta hev re birin û anîn. Kûçik ji rabû bû ser lingên xwe. Paşê her du jî ketin erdê.

Ev şer bi min pir dirêj hat. Ji tirsan ez direcifîm. Zilamên ko bi dû kûçik keti bûn, gihiştin cem me û bi darên xwe li kûçik xistin.

Sindik xelas bû. Lê reben, ji serçavê wî xwîn diheriki. Kûçik dêla xwe kir nav lingê xwe, serê xwe bera erdê da û çargav revî. Sindik ji min re got : « Metirse, tiştek ne bûye, birîn biçûk e ». Zilaman ew kirin himêza xwe û ew birin mala wî. Ez jî bi rev çûm mal, û min serhatiya xwe ji diya xwe re got.

Roja din Sindik ne hat dibistanê. Min ji diya xwe re got : « Yadê em herin mala wan, Sindik bibînin ». Diya min qail ne bû. Ewê digot, Sindik nexweş e, nabe ko em herin wî nerehet bikin ».

Paşê, her sibe, bi hêviya ko ez Sindik bibînim diçûm dibistanê; lê heyhat ! . . . ew qet ne dihat. Meger ew kûçik har bû. Sindik birin Diyarbekrê ser tixtor û ji wir jî birin bûn Stenbolê. Paşê me bihîst ko Sindik miriye.

*
* *

Her rojên Havînê ko zû ji xew radibim û sibehên ewravî dibînim, mîna herkesî, zarotiya min tê bira min. Welatê min î kesk, cihê ko lê hatim dinê tê ber çavên min û bê hemdê min hêstirên min diherikin ser destê min ê çepê. Li tiliya xwe a biçûk dinêrim, li ser movika navîn; li dewsa wê birîna peresteşî xêzeke biçûk û spî xuya dike, û hêj germiya lêvên hevalê min ê fedakar tê de ye. Di pişt re xeyaleta havalê xwe a qehreman, wî hevalê ko ji bona sonda xwe, ji bona xelasiya hevalê xwe, bi kûçikê har re pence pence şer dikir.

Salqîn : 12 - 9 - 1941 QEDRÎCAN

# KURDÊN
## ECEMISTANÊ Û HALÊ WAN

Şevêdî çend xort hatî bûn nik min û bi hênceta îşê Ecemistanê hin tişt li ser kurdên ecem ji min pirsîn.

Xortan dipirsî : Li Ecemistanê çiqas kurd hene û ew di çi halî de ne ? Tixûbên wan digehin heta kû derê ? Bi ketina ûris û îngilîzan wan welatan gelo halê kurdan hinek naguhêre û ew kurd, ji hatina van dewletan tu fêde nabînin ?

Min û xortan li ser van pirsan me gelek xeber da. Min dil kir xwendevanên Hawarê jî li ser vê axaftinê ser wext bikim. Evê xwestinê ev bend aniye pê.

Me got kurdên Ecemistanê. Gava mirov vê gotinê dibîne û dixwîne dibêje qey welatek heye jê re Ecemistan dibêjin û tê de hin kurd hene. Disan gotinên kurdên Tirkiyê û Iraqê ji dikarin bi vî awayî bêne mana kirin. Lê rastî bi awakî din e, esil kurd in, esil Kurdistan e.

Welatê kurdan, Kurdistan welateki bi hev ve ye. Miletine din ketine wî welatî û ew welat perçe kirine û her perçe ketiye bin hikmê dewleteke din. Ji lewre gava em kurdên Ecemistanê dibêjin mexsed ew kurd in ko di wî birê Kurdistanê de dijîn ko ketiye bin hikmê eceman. An ne kurd di her derê de di welatê xwe de ne û di tu derê de ne mêvanên xelkê ne.

Em vegerin ser pirsa xwe a bingetin, kurdên Ecemistanê.

Birê Kurdistana ko îro di bin hikmê eceman de ye welatekî mezin e, û xelkê wî xelkekî boş e. Roavayê Ecemistanê ji bakur heta nîvro, hesêb tev de Kurdistan e.

Di teşkîlata eceman a kevin de wilayeteke Kurdistanê jî hebû. Lê, nemaze piştî ko Şahê Pehlewî li ser textê Ecemistanê rabû bêjeyên kurd û Kurdistanê li Ecemistanê jî bûne kufir û bilêvkirina wan bate bend kirin. Herwekî tirk ji me kurdmancan re tirkên çiyayî dibêjin, eceman jî navê ecemên çiyayî li me kirine. Bi vî awayî em bûne tirk û ecem, lê em mane çiyayî û ne bûne deştî. Lê gava ew ji me re çiyayî dibêjin mana hovbûnê tê de vedişêrin. Ji xwe heke ew çiya ne biwan Xwedê dizane heta niho çi ji me dikirin.

Herwekî me got roavayê Ecemistanê ji bakur heta nîvro tev de Kurdistan e. Ev Kurdistan bi Kurdistanên Tirkiyê û Iraqê ve ye. Ji nîvro her bi bakur ve Kurdistana ecem, bir bi bir bi awayê jêrin bi nav dibe: Loristan û eşîrên bextiyarî, Kirmanşahan, emareta Erdelan, Mikrî û Sawicblax, nîvroyê wilayeta Azerbeycanê. Roavayê gola Ûrmiyê : di vê mintiqê de û di her sê qezayên Xoy, Selmas û Ûrmî de zehf kurd hene. Herçî qeza Makû, hesêb tev de kurdmanc e. Di hir ve kurd digehin tixûbên Qevqasê. Di Loristanê re jî digehin behrê, Xelîca Besrê, bendera Benderbûşîr.

Ev, Kurdistana Ecemistanê ye ko herwekî me got bi Kurdistanên Tirkiyê û Iraqê ve ye. Jû pê ve di gelek cihên Ecemistanê de kurd hene.

Di dora Tehranê de eşîra Pazokî. Li Xuresanê eşîrên Pejnawend, Bawenor, Zehferanlû. Li Hemedanê eşîrên Cozkan. Li Mezindranê eşîra Modanlû. Di wilayeta Faris de

eşîrên şevankare. Erdê van eşîran digehe Xelica Faris, Benderebasê. Di Iraqa ecem de eşîrên Embarbo. Di navbera Qezwîn û Gêlanê de eşîrên Omerlû. Di her çar wilayetên Kirman, Gêlan, Xûzistan û Qehistanê de ji kurd hene.

Gelo nifûsa kurdên Ecemistanê çi ye? Ne bi tenê li Ecemistanê, lê di tu derên Kurdistanê de nifûsa kurdan bi temamî ne nas e. Ji ber ko tirk û ecem gava statîstîkan çêdikin nifûsa kurdan nadin zanîn. Lê herhal kurdên Ecemistanê divêt ji du milyonan bêtir bin. Dr. Blêç Şêrkûh wan digihîne 3 300 000î.

Beriya Şahê Pehlewî Ecemistan dewleteke mîrî bû. Smaîl axayê şikakî yê ko bi navê Sîmko deng daye ji waliyên Ecemistanê xweyîkî (xoki) distandin. Digel vê hindê eceman siyasetek di heqê kurdmancan de hebû. Ewan jî weke tirkan dixwest kurd temsîl bikin, yanî kurd bikin ecem. Ev siyaset nemaze di wextê şahê Pehlewî de xwe eşkere kir. Beriya wî ev siyaset wek mareki sermadîtî bi tenê dûvê xwe tev dida, bêî ko bikare serê xwe hilde û jehra xwe birijîne.

Di vê Kurdistanê de emareta Erdelan berberî bi şahên ecem dikir. Şahên ecem, ji ber ko bi xurtî bi mîrekên Erdelan ne dikarîn tevdîreke dîn ji wan re dîtî bûn. Nermiya jinan. Şahên ecem bi vê nermiyê ew sist kirin û paşê ew şkênandin. Belê şahên ecem keçên xwe dan mîrekên Erdelan, ew kirin zavayên xwe û bûn xwezûrên wan. Bi keçên şahê ecem re efyonkeşî û meyxwerî ji ketin qesra wan mîrekan. Piştî çendekê keçên şahê ecem ne bi tenê jinên mîrên Erdelan bûn; lê bû bûn diya wan jî. Êdî karê hikûmetê, işê kurdên Erdelan ketî bû destên xwarziyên şahê ecem û wan bi ray û tevdîra diyên xwe, yên ko keçên şahê ecem bûn ew digerandin. Pêşdetir ew xwarzî çûn ser mezheba xwalên xwe jî û bûn şîhî. Nemaze di wê heyamê de sinnî û şîhîtî wek kufr û îmanê dijminên hev bûn. Herçi kurdên Erdelan sinî bûn. Gava mîrên wan bûn şîhî ewan rû ji wan ba da û bi vî awayî ew xelk ji destên mîrên xwe derketin û mîrekên Erdelan wek şivanê bê kerî di çola Xwedê de bi tena xwe û xelkê wan bêserî man, û ew wek keriyê ko guran bi ser de girtî ji hev belav bûn. Ji xwe eceman jî ev diviya bû. Ji bona ko bikarin wan yeko yeko bêxin bin destên xwe. Welê jî bû.

Di wextê Pehlewî de siyaseta eceman di heqê kurdan de li ber siyaseta tirkan hatî bû girtin. Şahê Pehlewî piştî ko ordiwa wî gihaşte 80 000î menawreyek di Kurdistanê de çêkir û kurd ji çek kirin. Herçi mezinên kurdan, yên ko av bi wan sar û germ dibû, ew ji anîn Tehranê.

Kurdên Ecemistanê ji wek kurdên her derê - ji ber ko nezan in - bi hev ne xweş in. Eceman jî wek tirkan, ji vê berberiyê îstifade dikir û eşîrên kurdan berdidan hev.[1]

Ji milê dîn kurdên Ecemistanê di miliyetê de, ji kurdên hemî deran kêmtir in. Ew kurd bêj li xwe hişyar ne bûne. Dizanin ko kurd in, lê nizanin kurdîtî çi ye û daxwaz û armanceke kurdan heye. Herçi miletên bêarmanc zûka winda dibin û têkilî miletine din dibin. Ji lewre ji kurdên minewer re yên ko firsend bi destê wan dikeve divêt li hişyariya van kurdan bixebitin.

Bi hatina ûris û ingilîzan welatê Ecemistanê, halê kurdan dikare biguhêre û divêt biguhêre. Lê ji bona vê yekê ji divêt kurd ji van dewletan re şanî heyineke milî bidin; da ko ew ji qedrên wan bigirin.

---

[1] Di vê babetê de ezê ji xwendevanên re tiştê ko min bi xwe dît û bihîstiye bidim zanîn. Di sala 1930î de Şahê Pehlewî, ji ber ko min ji ya wî ne kirî bû, ez ji Tehranê ajotî bûm Iraqê. Li nîzingî Kirendê, di çayxanekê de me bihna xwe dida. Mihafizê min çû bû destavê. Ez bi tenê ma bûm; min çavên xwe li dora xwe digerand. Di alîkî çayxanê de çend peya bi ciline nîveskerî rûniştî bûn. Nizanim çire, min guh da axaftina wan. Bi kurdî dipeyivîn. Min nîzingî li wan kir û min zanî ko ew jenderme ne, lê jendermeyên çolê. Belê işê wan di bajaran de nin bû. Yekî ji wan nîvjenderman gote min:

— Belê ji me re jî dibêjin jenderme, lê em jendermeyine texlît in. Jî xwe tu nabînî cilên me nîvî mîrî nîvî kurdmancî ne. Em wek jendermyên din timobîlan nasekinînin û ji xelkê pirsiyariya tezkeran jî nakin. Işê me kuştina nijdevanan e. Em kurd in, ma tu jî ne kurd î? (Min got belê). Xelkê van welatan hemî kurd in. Eşîra teniştа me neyarê me ye. Me gelek mêr ji hev kuştine. Bi dor em li hikûmetê asê dibin û wêrgûyê nadin. Hikûmet dizane ko em pev ne xweş in; radibe destê yekê digire û li a din dixe. Par em li hikûmetê asê bû bûn, neyarên me bûn jenderme û li me dan. Îsal ew li hikûmetê asê ne, em bûne jenderme û li wan didin û heyfa xwe ji wan hiltînin. Me gelek ji wan kuştine, lê hêj me 35 mêr di zikê wan de hene.

Di vê demê de mihefizê min bat û got ko timobila me kar e. Em bi rê ketin.

# REWŞA DINYAYÊ

ÎŞÊ JAPONYAYÊ — Japon hevalbendekî mihwerê ye, yanî hevalbendê elman û talyan e. Ji xwe beriya vî şerî ji ji van her du dewletan re dewletên mihwerê digotin. Mihwer xeteke xeyalî ye ko Berlîn û Romayê digehîne hev.

Herwekî xwendevanên me dizanin japon jî pişti şerî kete vê tifaqê û ji ber ko bi japonan xwediyên vê tifaqê ên mezin bûne sisê, navê tifaqa sêbendîn ji lê kirine.

Ev çar sal in Japonye di rohelatê dûr de şerê Çînê dike û hêj zora wê ne biriye. Yanî serê Japonyayê ne bê teşxele ye. Lê Japonyê di rohelatê dûr de armancine mezin hene. Berî her tiştî Japonye dixwaze lingên ewropayî û emêrîkuniyan ji rohelatê dûr qut bike û wan vegerîne welatê wan. Ji vî karî re jî ji îro çêtir firsend nîne. Ingiltere şerê elmanan dike, Emêrîke jê re çek û ceberxinan çêdike. Jû pê ve Emêrîke xelkê xwe hazir dike, roja ko xelk qîma xwe pê anî Emêrîke jî tifinga xwe wê biteqîne.

Japon di vî deravî de bêqerar e. Carina dengê xwe bilind dike, diçe wî serî tête vî serî û zirtê xwe dide. Li şerê Ûris fedikire û gava dibîne ko ûris li ber xwe didin û zû zû naşkên dengê xwe nizim dike û dibêje ez dixwazin her işê xwe bi aşiyê saz bikim û radibe berê xwe dide Emêrîkê. Ji xwe di meha Îlonê de serekwezîrê Japonyayê ê berê mektûbek ji mister Rûzwelt re nivîsandî bû û japon û emêrikanî dest bi dan û standinê kiri bûn. Mizakere bi xef bû û mister Rûzwelt bi xwe ew mizakere digerand. Lê jê tu netice derneket û li 16ê Çiriya Pêşîn ajansan da zanîn ko wezareta mîr Konoyê îstifa kiriye.

Sibetirê general Toyo wezareta japonî teşkîl kir. Ingiltere û Emêrîke bi vê guhartina wezareta japonî gelek bendewar bûn û guhên xwe bel kirin. Gelo wezareta Toyo wê çi bike?

---

. Herhal bi ketina wan dewletan erdê ecem, bivê nevê zilma eceman di heqê kurdan de wê kêm bibe û heke kurd dil kirin û herwekî me got şanî heyîneke millî dan, ûeye ko bigehin hin heqên xwe jî.

Şam 24 Îlon 1941. HEREKOL AZÎZAN

General Toyo ji terefdarên Japonya mezin û ji terefdarên şer e. Dinyayê got Japonyê hikûmeta xwe guhart, dike bikeve şer. Serekwezirê nû general Toyo nitqek da û tê de nemaze li çar niqtan işaret kirin:

1 — Qedemdina şerê Çînê.

2 — Pêkanîna yekitiya Asyayê

3 — Di hundirê welêt de yekitiyeke millî anîn pê

4 — Tevgirêdana Japonyayê bi dewletên mihwerê xurtir kirin.

Wezareta general Toyo wezareta serdarên eskerî ye. Yanî esker di warê siyasetê de zora sivîlan birine û ji ber vê yekê Konoyê istîfa kir û Toyo hikim xiste destên xwe.

Lê Toyo ji ne wêrî bû bikeve şer. Çire? Wer dixuye ko serdarên Japonyayê jî bû bûn xapinokên nitqa Hitler a paşîn. Hitler bi wê nitqê dida zanîn ko ordiwa ûris ji hev de ketiye û hew bi kêrî şêr têt. Li ser vê yekê japonan goti bû dora me ji hatiye divêt em jî dirêjî Sibîryayê bikin û para xwe ji mirata ûris bibin. Herwekî kurdmanc dibêjin: ko ga ket erdê kêr zehf in. Lê japonan hala xwe da û dît ko ji bervaji gotina Hitler ve ga hêj ne ketiye erdê û ji piyan sekinî ye. Japonan gava ev dit kêra xwe vegerand kalanê wê, û vegeriyan siyaseta herênayê.

Di şerê ûris de wezhiyeta japonan mîna wezhiyeta talyanan di şerê Frensê de ye. Japonyayê li Mençûriyê li ser tixûbên ûris yên rohelê esker kom kiriye da ko ûris mecbûr bibe bireki eskerên xwe li ser van tixûban bihîle û van nebe qada şerê roavê, pêşberê elmanan.

Herwekî me got Japonye carina fortê xwe dide; rojnameyên japonî li Emêrikê radibin. Dinya dibêje qey Japon sibe bikeve şerî. Lê . . . paşê ba digubêre, li şûna bayê kur î xurt bakî xerbî î xweş û nerm radibe.

Ji xwe îşê japonan zehmet e Ji ber ko heke Japon xwe tev da divêt, ji Çînê pê ve, şerê sê dewletên din bike, Rûsye, Ingiltere û Emêrike. Stola emêrîkanî xurt e. Ingilîzan jî di behra japonan de stolek heye.

REWŞA EMÊRÎKAYÊ — Emêrike hêj ne ketiye şer. Lê bi her awayî arikariya ingilîzan dike û jê re dixebite. Cenkeştiyên wê vaporên ingilizî, ji çek û cebirxanê dagirtî, ditînin heta girava Îslandayê û wan bi rê ve ji noqarên elmanî diheminin. Elmanan heta niho ji dehan bêtir vaporticeretên emêrikanî bin av kirine. Li 17ê Çiriya Pêşîn

noqareke elmani di nîzingî Islandayê de bera torpiyoreke emerîkanî — bi navê Kerney — da û ew birîndar kir. Bertorpiyor ne xeriqî, lê ji deryavanên wê 11 peya hatine kuştin. Digel vê hindê navbera elman û emêrîkaniyan hêj ne şer e.

Li 27ê Çiriyê reîscimhûrê Emêrîkayê Mister Rûzwelt nitqek da û tê de dirêji Hîtler kir û careke din ji dinyayê re da zanîn ko Emêrike xwe ji boyî şer kar dike.

Rûzwelt di vê nitqê de wek reîsdewletê miletekî şerevanî xeber daye. Lê qala Japonyayê ne kiriye. Dibêjin ko ev elametek e ko Emerîke digel japonan di mizakerê de ye.

Ne bi tenê Rûzwelt qala Japonyayê ne kiriye, lê Emerîkê da zanîn ko ji ûrisan re di riya Veladivestokê re êdî çek û çeberxanê naşîne. Bi vî awayî heçko Emêrikê ji ya japonan kir. Ji her ko japonan çend caran ji Emêrikê re goti bû ko nikare lê razi bibe. Ji lewre Emêrike divêt çek û ceberxanê ji ûrisan re di riya bakur yanî di bendera Erkenjêlskê re an di nîvro di riya Ecemistânê re bişîne Riya bakur zehmet e, ji ber ko Zivistanê pêde bendera Erkenjêlskê dicemide. Herçî riya nîvro gelek dûr e; ji Emêrikê heta wê derê 12000 kîlometir e. Elman jî dikin bikevin Qevqasê û vê riyê bigirin.

ŞERÊ ÛRIS — Îro hemî dinya qala şerê ûris dike û herkesî çavên xwe berdaye wê qada cengê. Ingiliz û emêrikanî cehda xwe dikin ko arikariya ûrisan bikin û nehilin ko dewleta bakurê Asyê û Ewropayê di bin lingên eskerên Hitler de bête pelaxtin. Û heq di destên wan de ye. Ji ber ko îro di pêşiya Hitler de kes ne maye ko li Ewropayê şerê wî bike. Şer dom dike û hero ji roja borî xurtir dibe. Ûris jî bi mêranî şer dikin û gelek li ber xwe didin. Herwekî stranê gotiye di vî şeri de, bihustê lawê bavan bi lîre ye.

Hîtler bi xwe da zanîn ko şer xurt bûye û wê hêj xurtir bibe. Belê fûrer yanî rêberê elmanan li 4ê Çiriya pêşin, li Berlînê û bi hênceta arîkariya Zivistanê nitqek da.

Hitler di nitqa xwe de, nemaze qala şerê ûris kiriye û xwestiye ji miletê xwe re bide zanîn çire ev teşxela mezin aniye serê wî. Bi kurtî Hîtler ji miletê xwe re got; min bala xwe dida û didît ko ûris bi me ne rast e û dilê xwe li me xerab kiriye, xwe pêk ditîne û dike li me xe. Ji lewre min da eqlê xwe gelo ez li hêviya derba wî bimînim an ez rabim û beriya ko ew li me xe ez li wî xim. Min lêxistin di ser hatin lêxistinê re girt, û min ne xwest fîrsenda lêxistinê bidim dijminê xwe. Min ev fikir gihande qerarê û li 22ê Hizêranê emrî ordiwa me kir ko dirêji welatê ûris bikin û wê talûka mezin ji ser serê me rakin û imperatoriya bolşêvikiyê ji binî edim bikin.

Ev, gotina Hitler e. Herçi ûris, derew bi aliyê vê gotinê ve didin û dibêjin, Hîtler rastiyê nabêje; me tucaran dil ne kir ko em li elmanan xin. Em bi wan re dilrast bûn; lê wan bêbextî li me kir. Hitler dixwaze welatê ûris jî wek welatên din bêxe bin destên xwe, lê elmanên reben divêt bizanin ko erdê ûris, herwekî ji ordiwa Nepolyon re bû bû, wê bibe gornistana ordiwa elmanî jî.

Hîtler li 4ê Çiriyê got, ev 48 saet in di qada şerê ûris de hicûmeke nû dest pê kiriye û heta çend rojan bonê netîca vê hicûmê bibînin. Ev hicûm ji bo ordiwa ûris wê bibe derba mirinê.

Bêdiro piştî çend rojan ajansan da zanîn ko elmanan di qada nîvro û navîn de dest bi êrişeke nû kiriye û wer dixuye ko armancên ordiwa elmanan Mosko û riyên Qevqasê ne.

Herwekî me got ingiliz û emêrîkanî qerara xwe dane bi her awayî arîkariya ûris bikin û nehilin ko ûris bişkê.

Ev arîkarî, ji îro de dest pê kiriye, û dibêjin ko tangine ingilizî gihaştine welatê ûris û bi ûrisan re şerê elmanan dikin. Lê arîkariya ko her du demokrasiyên mezin dibêjin tiştekî bê hed û hisab e; lê jê re hinek wext divêtin. Ji milê din dûrahiya riyan jî heye. Riyên navbera ûris û ingiliz û emêrîkaniyan rêne dûr in; behrin hene ko dikevin navê. Di bejê re ji mesafeyine bêpîvan hene. Ji lewre divêt ûris êrîşa elmanan bisekinînin û bi çekên ko ji Emêrikê jê re bên, li Biharê şerê xwe xweş bikin.

Elman jî bivê nevê li vê heqîqetê hişyar in û van hisaban bi xwe dikin û dibêjin, heke beriya Zivistanê me zora ûris ne bir û Zivistan li me geriya, li Biharê işê me, wê çetin bibe. Ji lewre bi çi awayî û bi çi behayî be divêt em di van çend rojan de derbeke welê bidin neyarê xwe ko pê gêj bibe û bikeve axa mirinê.

Belê, elmanan holê got û holê jî dibêjin. Lê mîna kurdmancan gotiye; kirin û gotin ne xweh û bira ne. Ji xwe li gora gotina Hitler diviya bû di nîvê Çiriyê de şerê ûris biqediya û ordiwa ûris ji hev de biketa.

Lê welê ne bû. Herçermd elman pêş ve çûne û erdine nû xisti bin jî destên xwe ordiwa ûris hêj li ser xwe ye û bi fedakarike mezin li ber xwe dide.

Hicûma ko Hitler di nitqa xwe de da zanin li 2ê Çiriyê dest pê kiri bû. Pisti şerê Smolenskê şer di eniya navin de heçko sekinî bû Vê carê elmanan ji vê eniyê dest bi êrîşa xwe kir û berê xwe da Moskoyê, payitextê bolşêvikan. Elmanan ji bakur û nivro ji dirêjî Moskoyê kiriye û heta 60 kilomêtirî nizingî payitextê bolşêvikan bûye, û rexma cehdeke mezin elmanan nikari bû bikevin bajêr. Şer di dora bajêr de dom dike û ûris bi awakî ecêb şer dikin. Ji milê din elman dixwazin ji bakûr û ji nivro bikevin piştа Moskoyê û li bajêr bêne wer û Mosko ji mîna Lênîngradê bêxin nav çemberê.

Ûris mikur tên ko payitextê wan ketiye talûkeyê. Lê newmîd nabin û şerê xwe xweş dikin. Lê herçî hikûmet ji serfermandariyê pê ve ji Moskoyê rabûye û çûye Semarayê. Semara (Kwîbişef) dikeve rohelatê Moskoyê û jê qederê 1000 Kîlomêtir dûr e.

Serfermandarê eniya navîn merêşal Timoşenko bû. Stalîn ew ji vê qadê rakir û general Zogov anî şûna wî.

Timoşenko çû eniya nivro. Di vê eniyê de jî rewşa ûrisan zehmet bûye. Ji ber ko elman zora xwe didin vê eniyê ji.

Ûrisan terka Odesê daye û eskerên elman û romanî li 16ê Çiriya pêşin ketin bajêr û bendera Odesê. Ûrisan beriya ko jê rabin avahî şewitandin û febrike herhewa kirine.

Li 25ê Çiriyê elman ketin Xerkovê ji. Niho erîşa elmanan li ser Rostovêye. Rostov deriyê Qevqasê ye. Şer gihaştiye deriyên bajêr. Lê ûrisan elman li hire sekinandine.

Ji milê din elmanan avête ser nîvgirava Qirimê ji. Berzex yanî erdê ko nivgiravê digehine bejê gelek teng e, 8 kilomêtir e. Ûrisan di vê berzexê de istihkamine asê çêkiri bûn. Elmanan qederê 15 rojan xwe dane wan istihkaman û ew şkênandine û ketine rasta Qirimê. Di Qirimê de bendereke mezin heye Sevestepol. Niho elman wê bixwazin di avtenga Kerçê re derbasî peravên Novrosiskê bibin û jê bixwazin bikevin ser riyên Qevqasê. Bi vegertina Qirimê rewşa ûris di qada nivro de wê gelek zehmet bibe. Ji ber ko petrolên Qevqasê rast bi rast dikevin bin talûkê. Ji lewre û li gora ajansan eskerên general Wêvel berê xwe dane Qevqasê. Bivê nevê ingiliz nikare bihîle ko elman bi-

# BINGEHÊN GRAMÊRA KURDMANCÎ

BI NAVÊ YEZDANÊ PAK Ê DILOVAN Û MIHIRVAN

— 9 —

75 — Pronavên kesin. Ji van pronavan re pronavên kesin dibêjin. Ji ber ko ew, nemaze, dikevin şûna kesan û wan dinimînin. Di kisetê de sê kes hene ko dikevin axaftinê. Ê xeberbêj, yani yê ko daxêve, û yê ko pê re têtе axaftin û kesê ko axaftin li ser wi ye. Di gramêrê de ji wan re kesê pêşin, kesê diwim û kesê seyim dibêjin.

1 — Kesê pêşin. Yê ko daxêve: ez. min, em, me, xwe.

2 — Kesê diwim. Yê ko pê re têtе axaftin: tu, te, hon, we, xwe.

3 — Kesê seyim. Yê ko di axaftinê de qala wî dikin: ew, wî, wê, ew, wan, xwe, ê.

Ji van pronavan « wî » nêr, « wê » mê û ên mayin tev de, yanî: « ez, min, tu, te, ew, em, me, hon, we, wan, xwe, ê » nêtar in.

76 — Pronavên lihevxisti. Ji pronavên nêtar hinên din hene ko ji wan re pronavên lihevxisti dibêjin. Ji ber ko ew bi lihevxistina daçek û pronavekê têne pê.

(dûmahik heye) C. A. Bedir - Xan

---

kevin Qevqasê û destên xwe deynin ser bîrên petrolê.

Ji lewre ingiliz çek û ceberxaneyên ko ji Ingilterê û Emêrîkê tên di benderên xelîca Besrê û di riyên Iraq û Ecemistanê re dişinin Qevqasê. Û ji bona vê yekê ji mihendisên ingilizî wan benderan diedilînin û fireh dikin. Ji ber ko arikarî roj bi roj bêtir dibe û di wan benderan de cih hinek teng e.

Li gora nûçeyên paşin elmanan Qirim, ji Sevestepolê pêve vegirtine û dest bi bomberdimana Sevestepolê jî kirine.

Bi vegertina Qirimê stola ûrisan ya behra reş jî wê bikeve tengiyê. Ji ber ko di peravên Qevqasê de ji Nevrosiskê pê ve tu bender nine ko bikare stola ûris bihewîne. Elmanan ji niho de Nevrosiskê dane ber bombeyên balafirên xwe. Di roavayê Behra reş de bendera Batûmê hebe ji ev bender nikare stoleke mezin bihewîne.

Lê herçî jî hebe, ûris xwe bi şûn de bikişînin jî bi mêranî şer dikin û gelek li ber xwe didin.

Şam: 3 Çiriya - Paşin 1941 NÊREVAN

BIRÊ FRENSIZÎ :

# MELAYE DJEZIRI

Mela Ahmad, plus connu sous le nom de Malayé Djeziri, est, avec Ahmadé Khani, l'un des deux classiques kurdes les plus populaires.

Nous ne savons pas grand chose de lui. Son nom indique qu'il naquit à Djeziré, mais aucun document ne permet de fixer d'une façon certaine l'époque à laquelle il vécut. On rencontre dans une élégie de Faqih Teyran, un chronogramme indiquant la date de la mort du poète. Malheureusement, le texte en est si corrompu qu'il est impossible d'en tirer une conclusion. Dans son " Recueil de notices et récits kurdes", Jaba se fait l'écho d'une opinion suivant laquelle le Mela aurait quitté ce monde en 550 H ( 1155 -56 AD). Enfin, un manuscrit appartenant à l'Emir Djeladet Beder Khan contient une note disant que notre auteur a dû mourir à peu près en même temps que le Sultan Mehmet Fatih ( soit vers 1485 ), mais plutôt aprés lui.

Cette dernière thèse parait la plus raisonnable. En effet, la date 550 H est aussi, approximativement, celle à laquelle disparut le premier grand poète mystique de l'Iran, Senai. Or, les oeuvres du Mela sont profondément pénétrées de l'influence du soufisme persan, mais ses idées et son style rappellent ceux de Hafez ( mort en 1389) et de ses successeurs plutôt que ceux de Senai. De plus, la pièce par laquelle débute le divan du poète kurde est une immitation du célébre premier ghazel de Hafez. Elle ne peut donc avoir été composée qu'après la première édition des oeuvres de cet auteur ( 1368 ).

Malgré ces données, la question reste sans réponse. Elle ne pourra être résolue que le jour où l'on possèdera un texte correct de l'élégie de FaqihTeyran, à défaut de quelque autre document. Signalons enfin que la tombe du Mela, qui se trouvait à l'intérieur de la Medresa Sor, à Djeziré, et qui était un lieu de pélerinage, a été détruite par les soldats turcs. Il y a donc peu d'espoir que l'on retrouve jamais son épitaphe.

La tradition orale compense dans une certaine mesure le manque de sources écrites et nous donne quelques renseignements sur la vie du Mela ( cf. " Hawar ", no 6 ). Elle nous a même conservé son portrait : c'était un homme de taille moyenne, le visage arrondi, le teint clair. Il avait les yeux et les sourcils noirs, la barbe clairsemée, le front large, le cou allongé. Il se coiffait d'un foulard maintenu par une sorte de turban. Il était ordinairement vêtu d'un caftan et d'un aba, et chaussé de sandales rouges. Son commerce était agréable, il était toujours souriant et prenait garde de ne blesser personne.

Melayé Djeziri s'appelait, de son vrai nom, Ahmad Nichani. Ayant commencé ses études à Djeziré, sa ville natale, il les continua en Iraq, en Syrie, en Egypte et en Perse. A son retour au pays, il fut un certain temps l'un des favoris de l'Emir. Mais il ne tarda pas à se brouiller avec lui. Il se retira alors à Dyar Bekir, où il demeura quelque temps. Il regagna ensuite Djeziré et y termina ses jours.

On raconte aussi que le Mela était épris de la soeur du prince de Botan, Izz ed Din ( dont on ne trouve pas trace dans l'histoire ), et que le souverain, ayant compris la pureté de cet amour, maria les deux jeunes gens.

Le poète allait d'ordinaire composer ses vers aux environs de Djeziré, à Westani. La légende prétend que, lorqu'il se levait pour partir, le rocher sur lequel il s'était assis restait tellement surchauffé par le feu de l'inspiration, que les paysannes du village venaient y cuire leur pain.

Melayé Djeziri a laissé un divan d'environ 2000 vers. Les idées et les sentiments qu'il y exprime sont ceux du soufisme persan, le vin de l'extase, les joies et les peines de l'amour mystique ( qui se confondent souvent avec celles de l'amour terrestre ), l'attente du retour au Principe Universel, forment les principaux thèmes chantés par le poète. Les deux ghazels que nous traduisons ( II et IV, cf. texte kurde. p. 4 - 5 ) permettront de se faire une idée de son oeuvre. Comme nous le remarquions plus haut, le style en est fortement influencé par l'Iran. Les mots persans et arabes sont nombreux dans le vocabulaire du Mela, beaucoup plus que dans celui d'Ahmad Khani. La nature de l'inspiration de son recueil, et les difficultés qu'en présentent la lecture, font qu'il est beaucoup plus populaire parmi les chaykhs et les mollahs que dans les autres classes de la société kurde. De nos jours encore, il est lu et commenté dans les écoles coraniques.

*
* *

Ton nom est inscrit au registre éternel.

La plume de la Connaissance [1] a tracé un signe dans le Grand Livre ( de la création ).

Tout n'est que formes et lignes à l'intérieur du cercle et des points de l'Amour mystique.

Ces figures [2] sont des symboles parmi les hallucinations du néant.

La lettre Mim a rendu le lever du soleil de l'Unité étincelant comme un miroir [3]

Elle scintille, et son éclair, parti d'entre les Arabes, va frapper la coupe de Perse.

Afin que nous puissions contempler les témoins des Noms Divins sous tous leurs aspects [4],

Elle a enivré l'un de l'Eternel, à l'autre, elle a livré la forme de l'idole,

L'un est épris de la chevelure, à l'autre est apparu le grain de beauté.

Elle a donné le miroir à Alexandre, et la coupe à Djam [5].

Les âmes saintes désirent la nuit de ton Qadr [6],

Ta lumière est le flambeau qui éclaire la lampe du sanctuaire.

Afin de pouvoir, lorsque je te rencontrerai, trouver grâce à toi la vie dans l'éternité,

J'ai livré par avance au néant l'essence de mon coeur et de mon âme [7].

Les marchands de rubis ont brisé le diamant dans leur main,

Cette tablette de diamant marquée par le Dessinateur. [8].

Seigneur, comment mes lèvres pourraient-elles cesser de chanter ta louange ?

Gloire à Toi : je ne mettrai pas de terme aux cantiques que je t'adresse.

Grâces soient rendues à Dieu qui, à son esclave le Mela,

A dispensé l'élexir de peine et d'amour, sans dinar ni derhem [9].

*
* *

Les fils des mages vendeurs de vin [10], chaque matin à l'aube, viennent à la danse]11].

Les buveurs, vidant coupe sur coupe restent prés de la rivière [12].

Les tresses des unes répandent l'odeur de l'ambre [13], les autres sont de douces brunes.

D'autres encore, sont des joyaux pareils à Canope des cieux;

Certaines sont blondes et . . . . [14], elles ont des visages de fées, des joues de perle.

Voyant que le monde allait de la sorte, je perdis patience et calme.

M'ayant ravi patience et calme, elle me dechirait le foie [15].

Qui m'opprimait ainsi ? Elle me ravissait l'âme et le coeur.

Voici mon âme et mon coeur, voilà ma belle au visage de houri,

Voilà mon roi ! Je suis un mendiant ( qui frappe ) à sa porte.

Lorsqu'elle me vit quémander, l'amie me prit par la main,

Elle me conduisit à la danse(16).Ni danse ni musique ne s'interrompirent.

Le grain de perle me dit : « Nous sommes tienne, et tu es nôtre,

En réalité, nous me faisons qu'un, mais le problème est insoluble »[17].

Je bus le vin que me tendait sa main. Je m'éveillai, seul et ivre.

Une goutte d'eau avait rejoint la mer, mais la mer restait pareille.

N'écoute pas le vulgaire, ne renonce pas au vin.

La plupart sont dans l'affiction, la plupart sont frappés de cécité.

Toutes les lettres ont la même origine, si tu les réduis à leur principe :

Chaque lettre devient une ligne; ôte la ligne, reste le point

L'Unité absolue [18], Mela, est la lumière irradiant les coeurs;

C'est là une question difficile à comprendre, et les mystiques restent dans le doute.

TAWÛSPARÊZ

---

(1) La connaissance divine.

(2) Les êtres et les objets creés.

(3) La premiere lettre du nom du Prophéte. Est prise ici comme symbole de la révélation. L'Unité : l'unité absolue de Dieu et du monde créé.

(4) Le mot şahid signifie littéramement " témoin". Chez les poètes mystiques persans, il a pris le sens de "bel adolescent, belle jeune fille" ( il n'y a pas de genres en persan ), les beaux jeunes gens étant sur terre les témoins de la splendeur divine.

(5) Djam est un diminutif de Djamchid, nom d'un souverain légendaire de l'Iran. Le miroir d'Alexandre, et la coupe de Djamchid sont des objets merveilleux permettant de contempler tout ce qui se passe dans le monde.

(6) La nuit du qadr est celle au cours de laquellé Mahomet eut sa première révélation.

(7) C'est à dire: je me suis anéanti dans la contemplation du Seigneur, renonçant à toutes les joies du monde.

(8) Les marchands de rubis sont les ignorants qui dédaignent les trésors du mysticisme ( le diamant ) pour se conssacrer aux jouissances terrestres ( le rubis ).

(9) C'est à dire: gratultement.

(10) Les fils des mages sont les directeurs spirituels des soufis. Le vin qu'ils vendent est leur enseignement, destiné à dispenser l'ivresse mystique. Au vers suivant, les buveurs symbolisent les initiés.

(11) Sema : séance de musique et de danses destinées à provoquer l'extase.

(12) Variante : à l'écart de la société.

(13) Nous avons suivi le texte de la variante.

(14) Deux mots incompréhensibles

(15) Le foie, comme le coeur, est le siège des sentiments.

(16) Cf. note 11.

(17) Dieu et la création, ( comme l'âme et le corps ) ne font qu'un en realité, suivant la doctrine soufie. C'est là le mystère auquel le Mela fait allusion.

(18) L'unicité de Dieu et du monde créé, cf. note précédente.

# Kitêbxana Hawarê

Hejmar:

1 — Rêzana Elfabiya Kurdî C. A. Bedir-Xan.
2 — Rupelnine Elfabê C. A. Bedir-Xan.
3 — Dirê Kurên Min Dr. K. A. Bedir-Xan.
4 — Bîyişa Pêxember. Bi Kurdiya dumilî, bi dibaca C. A. Bedir-Xan
5 — Nivêjên Êzediyan bi dibaca C. A. Bedir-Xan
6 — Mektûb ji Mistefa Kemal paşê re
7 C. A. Bedir-Xan
1 — Mesela Kurdistanê Bazil Nikitîn
8 — Ji mesela Kurdistanê C. A. Bedir-Xan
9 — Elfabeya Kurdî Dr. K. A. Bedir-Xan
10— Xwendina Kurdî Dr. K. A. Bedir-Xan
11— Elfabeya min Dr. K. A. Bedir-Xan
12— Dersên Şerîetê Dr. K. A. Bedir-Xan
13— Çarînên Xeyam Dr. K. A. Bedir-Xan
14— Proverbes Kurdes. Medhelokên Kurdî Lucy Paule Margueritte û Emîr. K. A. Bedir-Xan Paris - 1937.
15— Le roi du Kurdistan : Qralê Kurdistanê. Emir K. A. Bedir-Xan û Adolphe de Falgerolle. Paris - 1937
6— Der Adler von Kurdistan. Eyloyê Kurdistanê. Prinz K. A Bedir-Xan û Herbert Örtel Berlin - 1937
17 — Der Schnee Des Lichtes. Berfa Ronahiyê Şihrên Kurdi Prinz. K. A. Bedir-Xan û Dr. Curt Wunderlich Berlin - 1937

# Kiryariya Hawarê

| | | | |
|---|---|---|---|
| Salî | 500 | Qirûşên | Sûrî |
| Şeşmehî | 300 | Qirûşên | Sûrî |
| Sêmehî | 200 | Qirûşên | Sûrî |

**Xwedî û gerînendeyê berpirsiyar: Mîr Celadet Alî Bedir-Xan. Şam—Sûriye**
**Directeur Propriétaire : Emir Djéladet Aali Bedir-Khan. Damas—Syrie.**

SAL 9
HEJMAR 36

DUŞEMB
1 KANÛNA-PÊŞN 1941

# HAWAR

ANNEE 9
NUMERO 36

LUNDI
1 DÉCEMBRE 1941

## KOVARA KURDÎ ✶ REVUE KURDE

TÊXISTIYÊN VÊ HEJMARÊ



BIRÊ FRENSIZÎ ✶ PARTIE FRANÇAISE



ŞAM—1941
ÇAPXANA SEBATÊ

SAL 9
HEJMAR 36
DUŞEMB
1 KANÛNA-PÊŞÎN 1941

# HAWAR

ANNEE 9
NUMERO 36
LUNDI
1 DÉCEMBRE 1941

KOVARA KURDÎ ✶ REVUE KURDE

## TEFSÎRA QURANÊ

222 — Ewê ji te pirsa mehîkê bikin; bêje wan: Mehîk, tişteki rêvin û bi ezab e. Gava jin mehîka xwe dibînin, nîzîkî wan me bin, heta ko ew jê xelas û paqij dibin.

Ko paqij bûn, ji riya ko Xwedê ji we re emir kiriye, nîzîkî wan bibin. Xwedê ji tobedaran hez dike û hejî paqijan jî dike.

223 — Jinên we zeviyên we ne, bi awakî hon dixwazin zeviyên xwe biçînin. Ji bo nefsa xwe tiştine qenc pêk bînin. Ji Xudayê xwe hêviya zaroyên qenc bikin. Ji Xwedê bitirsin û bizanin ko honê rastî wî bên. Ji mirovên bawermend re mizginiya xweşiyê bide.

224 — Ji bona pêkanîna qenciyekê weke taet û ibadetê, ziyareta xelkên di xwe û li hev anîna mirovan, sund me xwin û ji bo nekirina qenciyekê navê Xwedê mekin behane. Xuda dibihîse û zana ye.

225 — Heke hon li ser tiştekî ne rast xapiyan û we bi rastbûna vî tiştî sund xwar;

Xwedê we berpirsiyar na ke, lê heke sundxwarina we nerast bû û hon pê zana bûn, hon berpirsiyar dibin.

Xwedê ji tobedaran re tobe dide, Xuda piyar e.

226 — Yên ko bi qesda ne nizikbûna jinên xwe sund xwarine, ji wan re çar meh mihlet heye.

Heke ew di nav wan çar mehan de nîzîkî jinên xwe dibin, Xuda di gunehên wan dibihure. Xuda efiw û tobê dide, Xwedê piyar e.

227 — Heke ew dest bi berdana jinên xwe dikin; Xuda dibihîse û dizane.

228 — Jinên berdayî heta sê mehîkên xwe bibînin divê bisekinin.

Heke avis in, divê avîsbûna xwe veneşêrin, ji ber ko veşartina vê-ne helal e, heke wan baweriya xwe bi Xuda û bi axiretê anîne.

Di nav wan sê mehan de vegera mêrê wan ji wan re çêtir e.

Heke mêrê wan dixwazin, bila bi jinên xwe li hevbên.

Jin û mêr divê bi devkenî û xweşdilî bidin, bistînin.

Lê mêr bi dayîna mehr û nanî ji wan pêşdetir in. Xuda delal û fêris e.

229 — Telaq du car in, piştî wan du telaqan, divê mirov jina xwe an li gora şerîetê bi camêrî li cem xwe bihêle an bi camêrî û comerdî jê veqete.

Standina mehra ko we ji jinên xwe re dane; bi temamî be an jê behrekê be, ji we re ne helal e.

Lê heke jin û mêr, her du dibînin ko li gora şerîetê emrê xwe bi çeyî û xweşdilî nikarin derbaz bikin, wê gavê, Gelî Qaziyan, ji bo jin û mêr di vegerandina mehrê de, a ko mêr ji jina xwe re da bû û li ser vê mehrê, bi tiştekî kêm û zêde, li hev hatina wan de, tu guneh nîne. Ev tixwîbên emrên Xuda ne, derbasî wan me bin, yên ko sînorên Xwedê derbaz dibin, dibin zalimên nefsa xwe.

230 — Heke mêr jina xwe careke din jî berda (telaq bûne sê car) êdî ew jin, ji mêrê xwe re ne helal e. Lê-

belê heke mirovekî din wê jinkê mehr dike û piştre berdide, paş vê berdanê, heke jin, û mêrê wê yê berê, ji xwe re yeqîn dikin ko dîsa li gora emrê Xwedê bi xweşdilî û çeyî bi hev re dikarin bijîn, ji nû ve ziwaca wan ji wan re ne tu guneh e.

Ev tixwîbên emr û hikmên Xuda ne, Xwedê wan pêş xelkê dike heta ko ew bizanin û pê bîrewer bin.

231 — Heke we jinên xwe berdan û sê mehîkên di wan timam bûn, an li gora şerietê wan bi qencî û kereme bihêlin cem xwe an dîsa li gora şerîetê bi qencî û comerdîyê dest ji wan bikişînin.

Di dema mehîkê de bi nîzikbûna wan tadê li wan me kin; yê ko vî tiştî dike zalimê nefsa xwe dibe. Ayet û emrên Xuda ma vêjin pişt guhê xwe. Bi şikirdarî û pakdiliyê nîmetên Xuda, yên ko ji we re hate dayîn, bînin bîra xwe. Û dîsa bînin bîra xwe.... Kitêb û ayetên Xwedê yên ko ji we re dahatine; û şîretan li we dikin.

Ji Xwedê bitirsin û bizanin ko Xuda bi her tiştî dizane.

232 — Heke mêr jina xwe berda û sê mehîkên jinkê timam bûn û jin û mêr paşî vê telaqê li gora emrê Xwedê li hev hatin û mêr xwest ko jina xwe a berdayî ji nû ve mehr bike; Gelî weliyên jinan, hon manii ziwaca wan me bin.

Ev ji wan mirovên ko baweriya xwe bi Xwedê û bi roja piştdawiyê anîne şîretek e.

Bi cihanîna vî emrê Xwedê, hon ji gunehên xwe paqij dibin. Xuda pê dizane û hon pê nizanin.

---

**Ji bona Tefsîra Quranê K.K. û li hejmaêrn 27, 28, 29, 30, 31, 32, 33, 34 û 35an fedkirin.**

# HEDÎSÊN

## CENABÊ PÊXEMBER

REHMET Û SILAVA XWEDÊ LÊ BE

385 — Hingî we sîr û pîvaz xwar derbazî mizgeftan me bin (xelk ji bihna sîr û pîvazê aciz dibin).

386 — Derewan me kin, derew ji baweriyê dûr diçe, dîn û derew nabin yek.

387 — Ji jina ko dixwaze bê sebeb dev ji mêrê xwe berde bihna bihuştê heram e.

388 Mezin û hakimên ko xelkê xwe dixapînin divê bizanin ko para wan dojeh e.

389 — Diya ko sê zaroyên wê mirine divê bizane ew sê zaro navbeyna agirê dojehê û diya xwe de dibin beden, diya wan rûyê agirî nabîne.

390 — Mirovên camêr û ewle dibin xwedî mal û rizq, xwedî nav û rûmet, bêbext şerpeze û perîşan dibin, meydana bêbextan tune ye.

391 — Heke xeyr û bereketa xwarinê dixwazî berî û piştî xwarinê destê xwe bişo.

392 — Xwarina daweteke a bê qedr û qîmet ew e ko dewlemend jê dixwin çavê feqîran lê dikeve û jê mehrûm dimînin.

393 — Mirovên xirab ew in ko mehvanê wan nîne.

394 — Qencî winda na be, xirabî jî na ye ji bîr kirin, Xwedê jî her heye, êdî ça wan dixwazî bike.

395 — Tiştê ko dilê te pê rahet dibe bike û ji tiştê ko dilê te pê rahet na be bigere, heke miftî bi awakî dî fetwa bide ji guh medê.

396 — Ko hon dibînin rastiyê bêjin, îşê we xira bibe dîsa ji rastiyê xwe vemegêrînin û bizanin ko îşê we her wê bimeşe û heke dibînin ko derewan bikin îşê we bimeşe dîsa rastiyê bêjin û bizanin ko îşê we pê xira nabe û dîsa dimeşe.

397 — Heke te di dema Xurtiya xwe de Xwedê nas dikir, Xwedê ji di dema qelsiya te de, te nas dike.

398 — Tacirê xwedînamûs hevalê pêxemberan û ehlê Xwedê ye.

399 — Têcirê tirsonek kar na ke, têcirê çavsor xurt û dewlemend dibe.

400 — Xwedê li mirovên ko bi qels û belengazan ra dilnerm in, qedrê dê û bavê xwe digirin û dilê xadim û xulamên xwe xweş dikin tê rehmê û ew dikevin bihuştê.

# DÎWANA MELÊ

## — 5 —

Çin çin kirin zilfên siyah keski etlasan qeba
Êdî nişan nabin xuya têkil kirin lazim seba
Min dî seba bayê seher mada ji bedrê kir du ker
Qews û qezeh jê hate der dîsan bi zilfan re teba
Îro ji me l'bedra temam enberfeşan bin sed
[ selam
Ey hudhudê şirîn kelam ehlen we sehlen
[ merheba
Min diblerek wek dur heye mehbûb û şirîn
[ sur beye
Hisn û cemalek pir heye Belqis-sifat mesken
[ Seba
Me divê perî ya dilberê lê hêj l'islûba berê
Lê kifş bibî tu j'pencerê tê û diçi teşbihi ba
Şûx û şepala meyperest ew zalima heşyar mest
Vê nameyê xwendî ve dest fi teyiha neşrun neba
Bêj' ew şirina surperi durdaneya ez Mişteri
Kan' ehd û peymana berê bê fêdê çû teşbîhî ba
Neyşekira spî dest û zend zanim mecalî na-
[ me xwend
Lêva tebesim kir ji qend maset keban fi reba
Dilber mecali name di nasî ko nişana me dî
Nûnek mixalif tê ne di, hel qelbiha nehwis
[ - seba
Qasid bi meqsûda me hat ba mijde û emr û
[ berat
Nîşan hinarin hem xelat şehzadeya gulgun qeba
Îro mecal lê hat û wext, dîsan ciwan bûn
[ dirext
Ew li efna danî ji text « ma kane berqen
(xelleba »(*)
Selwa rewan zeynî wereq çiçek melê dîn sed
[ neseq
Yaqûtuha yehkiş şefeq yehkî iqûden
[ kewkeba (**)

## — 6 —

Dilber şikinand [1] şekirek, « fequltu ya rûhî
[ meta » (***)
Got min heta xatir hebit, min got çi kim
[ ez ba [2] heta
Zilfan tu bes çin çin bike, miskîn miqabil
[ dîn bike
Pêşkêşî yek zilfa xwe ke [3] milkê xeten tex-
[ ti xeta
Dil bendi dama [4] zilfekê, kefti kemenda
[ ilfekê
Hel fi yedil meftûni şey, ew keyfe esneh [5]
[ ya feta (*)
Zilfê di van şîrîn leban, jehrî ne şibhî
[ eqreban [6]
Tîr têne dil wek kewkeban, girtin bi wan
zilfên duta [7]
Nisbet perî zîbayı tu, wek nêrgizan yekta
[ yi tu [8]
Yamen rea xulî fehel, yuşbih bi şey'in
[ qameta (**)
Ji wi baxçeya [9] yar zeyînî, bê pirs Mela
[ sêvek çinî
Rubbema ceneytu cenneti elqet eleya cina-
[ yeta [10] (***)

## — 7 —

Bi narê firqetê sotim ji ferqê ser heta pê da
Xedenga xefletê nihtim, ji berqa lamia lê da[1]
Xedenga firqetê re'd e, dilê ko nagihan lêde[2]
Dibêjin ger [3] cebel bit ew, bı ker bit wê
[ di gavê de
Heçî firqet ne dî hicran, bibin [4] min dax
[ wekî lê ne
Ji ber [5] derbê di hicranê, firaqi rûh û
[ can key da
Kesê mihnet ne dî firqet, ne xwarî [6] cir'e-
[ ya hicrê
Çi zanit [7] bê xeber jana dilê dax û ke-
[ ser tê da
Bi dama mihbetê bend im, xedenga firqetê
[ dil niht
Bi şibhî mirxi nîm besmel di hev wer têm
[ di xûnê da
Birûska batinî da dil, li sine pêta wî wer
[ bû [8]
Ko dê pehtin di pêta dil, di nav wî nar û
[ pêtê da [9]
Ji ilfê şibhetî zilfê midam lew bê qerar im ez
Ko can min eziz îro çû û dil ma di ilfê da
Ji mehbûb dûr kirim çerxê, felek ez pir
[ hilavêtim
Nizanim dê bi kû det min, di vê dewran û
[ çerxê da
Hebîbê bê xeta kuştim, bi derba firqetê axir
Ji wê rojê dizanî min, ko yar tîrek li cergê
[ da [10]

---

(*) ما كان برقا خلبا
(**) ياقوتها يحكي الشفق يحكي عقودا كوكبا
(***) فقلت ياروحي متي

(*) هل في يدالمفتون شي او كيف اصنع يافتا
(**) يامن رآى خلي فهل يشبه بشي قامتا
(***) ربما جنيت جنى القت على جنايتا

Gelo disa bibinim ez çiraya wisletê hilbit
Bisojim şibhi perwanê, li ber wê nar û şew-
[ qê da
Bi derba kewkeba sibhê li meşreq zihre tali, det
Zihel dûr bit li şeş bircan û winda bit di
[ xerbê da
Ji Sindê zihre peyda bit, ji Hindê miştert der
[ bit [11]
Sipêde det Sireyayê, şefeq det qametê pê da
Ji şewqa ebrûyan binimêt hilal disa di
[ qewseynan
Ji xawer bête der xurşid, zilam wer bit di
[ nûrê da
Bi werdan zeyînîn gulşen, çimen da lale
[ bişkiftin
Binefş û çîcekan vêg ra şefeq dane di rew-
[ dê da (12)
Sehergeh endelîb mest in, ji bihna werd û
[ bişkojan
Şibhi tûtak û goyînan dinalin em di firqê da
Li kêlbê asitanî xo ne persî qet hebib carek
Gelo nayête bîrê em, di vê nêçir û ravê da
Dizanim şehsiwara min xezalek wê di fetrakê
Bi cayî seyd ez bûma di wê fetrak û bendê da
Çi hedî sed hezar canan di fetrakê hebîbê min
Ko sed Cemşîd û Keyxusrew xulam in ser
[ di vê rê da
Di deh salan milazim mam û yarê rû ne da
[ carek
Eger yekcar bi min rû det, bes e carek di
] salê da
Dilo mizgîn bi te şa be, ko siltan me divê bêtin
Ji min bawer ke peyxamê, seher mizgîn bi min
| pê da
Şikir binahiya min hat, bi Yaqûb dîde rew-
| şen bû
Bi bûya Yûsifê misrê li ken'anê beser peyda
Nesimê sinbil û sêvan seher da hebs û zindanê
Vebû qifla me bê mifte we ringînî di qelbê da(13)
Firaqa şev bi axir çû sipêde kifşe bû disa
Merîxa nehs ava bû, xuya bû roj di şerqê da
Di çerxê wek nicûm dêmdur, sema hatin
[ qira nayek
Hêva bedrê talih bû Sihêl min di di reqsê da(14)
Ji wadi eymenî dilber, li min engûştek izhar kir
Çi xweş enwarê berqê wî tecela bû di Tûrê da
Qirana zihreyê min di di ber eqda Sireyayê
Ji perwînan dibêjim ekse hêj kefti di
[ camê da
Hebibê ezmi sihbet kir di caman lew şerab anî
Dilê min di du seyadan, ji biryan ra be-
[ ravê da (15)
Bitûlên asitanê ra vexwendin Mîr, li dergahê
Bi vi çavî hebîb ditim şikir ev şefqe Mew-
[ lê da
Ji şibhi (16) ebriwên saqi we bedrek min
[ miqabil di
Hilalin sed hilal îro işaret min ji eksê da
Bi zarê xwey şîrin xwendim, ji litfê bende
[ nîşan kir
Te pir cewr û cefa dîne, disilûk û se'y û
[ cehdê da
Biçîn werdan ji gulzaran, ko exyaran di
[ dest xar in
Ji mexsûsan di dergahê di'a min ew di
[ hicrê da
Bi teşrifa xwe ez xwendim, ji litfê bende
[ nîşan kir
Xelat û şifqe û dildan, şikirxwaz in ko ba
[ xwey da
Me hadir secdeya şikrê li vê erdê miqedes bir
Bi mijganên xwe dur siftin, enî malî li
[ erdê da
Eya bînahiya cavan pût û iz û latê min (18)
Tu yî pêşber (19) sicûda min, sehergahan di
[ xelwê da
Li bal ilmê te malûm e ji jîna min tu yî
[ meqsûd
Fidayê can me di can bit, di qesda wesl
[ û dînê da
Bi hisna xwe tu agah î, bi sehm û heybet
[ û dînî
Nicûm û kewkebê lamih, ji bala tên bi bej-
[ nê da (20)
Li xalên werd û nisrînan, ji qudret xet
[ kişandin lê
Bi terha nêrgiza ebla sehergahan nesîm lê da
Ko tule j'asitanê xwe nekî dûr tu ji dergahê (21)
Ji ba xwey vê ricay nakin di babê litf û
[ rehmê da (22)
Tu barê ferqetê zani nikarim(23)ez tehemil kim
Ji barê gohê-qendîl im, meger fîl im di eşqê
[ da (24)
Hero (25) derdê mezin firqet, ceger sot ateşi
[ da dil
Cihê sebrê ne ma çendan ferec min di
[ di sebrê da
Mela ! b'qameta yekta qiyamet min bi çavan dî
Firaqa rûsiyah îro ji min canê şirîn ci da(26)

**

**Em pê de diçin û ferqên her du nivîştan, ya min û ya Hawarê ji xwendevanên xwe re didin zanîn.**

— 5 —

**Ev xezel di nivîşta Qedrî begî de yekcar nîne. Me ev li ber nivîşta Mela Evdiselam nivîsandiye.**

— 6 —

**(1) Şikêna. (2) pa. (3) zilfek te bin. (4) dava**

# KEVIRÊ MÛSAYÊ EHMED

Li welatê Şêrwan, di bin qesra Şebistanê re, kevirek heye; jê re « Kevirê Mûsayê Ehmed » dibêjin. Qesra Şebistanê, naveki din ji heye keleha Kormasê.

Beriya 80 - 90 salî gava fermana Şêrwan rabû mîrê wî welatî Seid beg kurê Salihê lal bû. Seid beg mêrekî serdestê bû. Şerê dewletê kir û gelek caran romî şkênandin û bi kumên sor rengê çiyayê xwe ê heşîn kiriye sorbelek. Lê kurmê darê di nav darê de xwe tev da.

Berdevkekî Seid begî hebû, bi navê Şêrik. Ew jî mêrekî qenc bû. Lê bêbextî li mîrê xwe kir û derbasî aliyê dijmin bû; û çû heta Stenbolê û bi hafa siltên jî ket.

Bi rêzaniya Şêrik romiyan eskerê Şêrwan şikestin. Seid beg ket hêsîriye. Dewletê ew ajot Rûmêliyê û ew di keleha Vidînê de hebs kir. Sêd beg di wê kelehê de emrê Xwedê kir û tê de hate veşartin.

Şêrik bû Şêr beg û mezinahiya cihê Şêrwan xiste destên xwe.

Keleha Şebistanê qesra mîrekên Şêrwan bû. Şêrik ji xwest qesreke xwe çêke Şebistan li serê çiyê, di cibeki asê de bû. Şêrik dixwest qesrekê mîna wê, lê li deştê ava bike. Şêr beg dest avête kevirê Şebistanê ên şehkirî. Zibara xwe ji nav evîn û xulamên Seid begî rakir. Kevir li ser pişta zilaman dibirin deştê.

---

(5) esne. (6) zilfên bit û şîrînleban jebrî ne şibhet eqreban. (7) lê min ji zilfan pir kire îro tenê girtin du ta. (8) nisbet perî ziba ye ew, wek nêrgizan yekta ye ew. (9) me j' bexçeya. (10)

— 7 —

(1) tê da. (2) xedenga firqetê re'd e, dilê o xefletê lêdin. (3) wer. (4) ne bî. (5) ji bil. (9) vexwarî. (7) çi zanim. (8) birûska batinî da dil di pêtê sine wî wer bû. (9) ko dê bêtin ( an: dî pêtin ) di pêta dil di nav wî nar û pêtê da. (10) ko yar ew tîr li cergê da. (11) ji Qundis zibre peyda bit ji Hindis mişterî bit der. (12) benefş û çîçekan vêkran şefeq da yek di rewdê da. (13) vebû qifla me bê mifte zi rengîn ji qiflê da. (14) ko xweş enwar û berq in ew tecela bûn di Tûrê da. (15) ji biryan re berê wî da. (16) ji şiklê. (17) bi zehrê xwey şerîf xwendim ko xizmetkarê dirîn im. (18) heya bînahiya çehvan Lîl û iz ew welatê min. (19) pêşen. (20) nicûm û kewkeb û lamih ji l ala tên bi hejnê da. (21) ko tu lê asitanê dûr nekî êdî ji dergahê. (22) ji La xwey vê recû nabin di babê litf û rehmê da. (23) dikarim. (34) bi narê kûh û qendîl im bela fîl im di eşqê da. (25) dibî. (26) şirîn hey da. C.AB.

# HALAN

JI XWENDA Û MINEWERÊN KURDAN RE

Geli kurdên minewer, ma ne bes e ev keder
Pêti bi dinya ve ket, kes ne ma bê ceng û şer.
Agir li me bû xelek, mêrga neyar maye şin
Şewta cihan tev disoj, şahê Îran daye ber
Dijmin li ber dojehê, maye b'tenê bê şewat
Mirin jê ra sed silav, pê dilîzin zo û fer
Çendi û kurdên egît îro bûye nagihan
De helîne dexl û dan, bijî vejî bê keder
Çerxa felek mijde da, kurdên ciwan xortên no
Cenga welat hatiye, rewşa cihan ceng û şer
L' Ewirpaê tu binêr, ten û giban tev dison
Ji bo bijîn mîr û ser, hemî teva têne şer
Em bi tenê man nezan, belengaz û pir xizan
Nezanî bo me neyar, ma çi bêjim bê mefer
Îro ne benga xewê, roja havil û gerê
Hêvidar e qewmê kurd, ji we divê serxweser
Rehberê qewman e ew minewerê pir xebat
Bapîrê qewmê min e, kesê neyar bike der
Ma ne bes e ev hewar, hindî sal in mane jar
Bes e êdî bin şiyar, heya kengê ev keder.

HIŞYAR

---

Yeki ji kevirkêşan, bi rê ve, kevirê xwe danî bû erdê û pal da bû ser. Şêrik çav pê ket. Li ser pişta hespê xwe çowek li paş guhê wî danî û got ê:

— Ma tu westiyayî, an dil nakî kevirê xwe bibî ?

Kevirkêş, Mûsayê Ehmed, keserek li xwe anî û li Şêrik vegerand û got:

—Na herê, ma ez kengê diwestim. Lê texmîna tişteki dikim.

Şêrik çoweki di jî lê danî û pirsî: Texmîna çi dikî ?

Mûsayê Ehmed bê ern û xeyd, lê bi ken got ê:

— Ez dibînim ko felek li Seid begî geriyaye û tu kevirên qesra wî liser pişta peyayên wî dibî deştê. Em berê xwe didin jêr, pêşiya me nişûv e; em diqedînin.Lê heke rojekê felek li te jî geriya, hinên din wê rabin û kevirên Şebistanê bidin pişta çêlî û peyayên te û wan vegerînin cihê wan ê berê, serê çiyê. Didim eqlê xwe û dibêjim şikir ji Xwedê re berê me li jêre, lê peyayên te ên reben wê çi bikin berê wan wê qikeve kêş . . . . .

Mûsayê Ehmed ev gotin û rabişte kevirê xwe, Şêrik li ber xwe keti bû. Destên xwe berdan ber xwe, çavên wî di dûrahiya ezman de li ser niqtekê sekinî bûn. Qey tê de tiştên ko Mûsê jê re goti bûn wek xeya-

## REWŞA DINYAYÊ

SÊ MITIQ — Li 6ê Çiriya - paşin, Stalîn serekê ûrisan nitqek da û li Moskoyê di Meydana - sor de birek ji ordiwa sor di ber Stalîn re borî û bolşêvîkan cejna Çiriyê şahinet kir. Cejna Çiriyê ew roj e ko tê de Lênîn bolşêvîkî ilan kiri bû ( 6ê Çiriya - paşin 1919). Cem bolşêvîkan ev cejneke mezin e; cejne wan a meztir e. Dema Stalin nitqa xwe digot balafirên rûsî di ezmanê Moskoyê de difirîn û bajêr ji hemleyên balafirên elmanî diparastin.

Stalîn piştî ko wesfê cejna Çiriyê da qise kir û got ko di sala 1919an de halê bolşêvîkan ji îro xerabtir bû. Nan kêm, cebirxane hindik bû. Piraniya welêt di eleyhê bolşêvîkan de bû. Digel vê hinde ordiwa sor di bin fermandariya Lênîn de xwe pêk anî û di dawiyê de mizefer bû.

Stalîn pirsa xwe pêş ve ajot û got: Îro dijmin birekî welatê me vegertiye û gihaştiye deriyên Mosko û Lênîngradê. Bivê nevê xesar gihaye ordiwa me. Lê ev ordû û stola me rexma van xesaran li pêşiya dijmin sekinîne û şerê wî dikin. Hêj di destên me de gelek madeyên hov, çek û cebirxane hene. Peyayên me jî zehf in. Hevalbendên me ji hene. Divêt em zora elmanan bibin. Dijminê me ne ewçend xurt e, herweki bi xwe bawar dike. Ji elmanan heta niho çar milyon û nîv peya çûne. Di destên elmanan de tu peyayên ihtiyat ne mane. Elman qewetên xwe ên paşîn didin der. Ji lewre hew dikarin di vê cidalê de pê li erdê bidin. Elmanya Hitler heta seş mehên din wê ji hev de bikeve.

Li 9ê Çiriya - paşîn Hitler li Münixê nitqek da çavên xwe li tiştên borî gerand;qala şerê ûris kir û got ko ev şer ne bi tenê ji bo Elmanyayê lê ji bo hemî Ewropayê cidala jiyîn û mirinê ye. Ji ber ko ev şer şerê Ewropayê digel bolşêvîkiyê ye û Ewrope tev de ketiye sefekê û şerê bolşêvîkan dike.

Hitler dibêje me ji ûrisan sê milyon û şeş sed hezar hêsir standine. Bi tevayî 18 milyon eskerên ûris ji sefa şer hatine êxistin. Elmanye careke din Çiriyeke wek ya sala 1919 an nabîne. [ Li 11ê Çiriya - paşin sala 1919an de Elmanyê ji sondxwariyan mitareke xwesti bû û teslim bû bû ]. Her tişt tête bîrê, her tişt dibe. Lê teslîmbûna Elmanyayê nabe û nayete bîrê. Heye ko şer dom bike, tiştine nû biqewimin, ordiwên her du aliyan heta tabûrên xwe ên dawîn şer bikin. Ev ji dibe. Lê tabûra paşîn ya ko di qada şer de wê bimîne û bi serdestî pê li erdê bide ewê tabûreke elmanî bibe.

Rêberê elmanan çêli Emêrîkê ji kir û got: Rûzwelt dibêje, min emir daye stola xwe ko bera vaporên elmanî bidin Herçi ez, min emir da stola me ko li vaporên emêrikanî nexin, lê xwe ji wan biparêzin û heke vaporên emêrikani direjî wan kir hingê dest bibin xwe û xwe midafehe bikin.

Piştî Stalin û Hitler û li 10ê Çiriya-paşîn, wezîrê Britanyayê ê pêşin, Mister Çorçil jî nitqek da.

Mister Çorçil dibêje: Şerê ko Hitler di Polonyayê de dest pê kir hemî Ewrope vegirt, jê derbasî Efrîqayê bû û jê kete birekî Asyayê ji. Heye ko ev şer hêj firehtir hibe û agirê şer bikeve hemi dinyayê. Lê Ingiltere hero xurtir dibe. Îro balafirên me ji yên elmanan bêtir nebin jî bi qasî yên wan hene û bi hin wesfên xwe di ser wan re ne.

Çorçil qala Pesifîkê ji kir û got: Ez nizanim cehda Emêrikê ji bo mihafeza aşiyê di Peşifîkê de wê here serî an ne Lê divêt ez bibêjim heke Emêrîke bêgav ma û şerê japonan kir piştî saeteke Ingiltere ji wê şerê Japonyayê bike. Japon bi qasî Emêrîkê ne xurt e. Ji lewre beke Japon şerê me kir wê bikeve perişaniyê.

Mister Çorçil berî qedandinê dibêje, heye ko Hitler disa qala aşiyê bike. Lê divêt herkes pê bizane ko Ingiltere ne bi Hitler û ne bi tû hikûmeta nazi re behsa lihevhatinê nake.

QANÛNA BÊTEREFIYÊ — Emêrike bi her awayî arikariya Ingilterê dike. Jê re her texlît çek û cebirxanê rêdike. Stola emêrikanî vaporqefleyên inglizi di Etlantîkê de dihemine. Ji milê din jê re gir û hûr 60-70 cenkeştî ji dane. Bi tenê vaporên emêrikani ên

---

letên gabûsekê diditin. Xwedê giravî Şêrik li bêbextiya xwe hişyar bû bû û poşmaniyê ew têşand. Şêr beg kevir ji destên Mûsayê Ehmed xiste erdê û got :

— Keleh û kevirên wê li min heram bin, ez miroveki kurdmanc im. Ez ne mêrê Qesrê me.

Şêrik da rê û vegeriya xaniyê xwe ê kurdmancî, zibara wî jî belav bû.

Ev kevir hêj li wê derê ye û jê re « Kevirê Mûsayê Ehmed » dibêjin. Di dora wî de diwarekî hişkeber jî heye.

HASTEDAR

# VÎBORG

## ORDIWA SOR EW ÇAWAN ŞEWITAND

Herwekî xwendevanên me pê dizanin gava şerê ûris û elmanî dest pê kir, Stalîn da zanîn ko ordiwa sor yanî ordiwa ûris heke bêgav ma û ji her dijmin kişiya ewê di riya xwe de her tiştî bişewitîne û xerab bike. Ji bona ko zad û zexîre û her tiştê ko bi kêrî mirovan têt nekevin destên elmanan.

Viborg bajarekî Fênlandiyayê ye. Di sala 1939an de Ûrisan ev bajar ji Fenladiyayê standi bû. Vê carê fenlandiyan bajarê xwe bi şûn de vegerand. Lê ûris beriya ko jê bikişin bajar şewitandine.

Rojnamevanekî emêrikanî, Cak Benêt, heta dawiyê li bajêr maye û jê bi ordiwa sor re derketiye. Cak Benêt dibêje:

Roja 28ê Tebaxê, esirkî naqûsên dêrên Viborgê, bi hev re lêdidan. Ez li cem berber bûm û min riya xwe kur dikir. Min ji berber re got:

—Piştî ko Stalîn serbestiya her ayînên diyanetê îlan kir keşe jî bi naqûsên xwe dixwazin xwe şanî bidin. Lê çire û nemaze di vî wextî de naqûs tev de lêdidin? Berber cûzana xwe danî û li min vegerand û got:

— Tu ko rojnamevan î, divêt beriya min te seh kiri be ko dijmin ketiye dora bajêr û jê bi tenê çil kîlomêtir dûr e.

Dibî min ji hakimê bajêr bibîsti bû merêşal Veroşîlov emir daye xefa rêbesîn ya ko dikeve roavayê bajêr xerab bikin. Min ji berber re got:

— Ma çi îşê naqûsan pê heye?

Berber: Bûye adet, di wextên talûkê de naqûs lêdidin. Ji xwe îro min ji yekî bihîst ko ordiwa sor di dora bajêr de wê li ber xwe bide hetanî ko bajêr bi temamî xerab bikin.

Ez li gotina berber ecêbmayî ne mam; çimkî min dizanî bû ko ûris her bajarê ko jê radibin xerab dikin.

Ji dikana berber rabûm û çûm otêla xwe; û derketim şehnişînê, Min dît ko ji taxa Romdenê dû û dûmaneke reş radibû. Romden taxa febrîke û destigahên sinhetê bû. Teqîn û reqînan jî didan pey hev. Min dilê xwe de digot, qey dijmin nîzingî li bajêr kiriye û bi topan li bajêr dixe. Ma ne diviya bû ko hikûmet di wext û zemanî de xelkê li ser wext bike.

Ez di van texmînan de bûm ko xwediyê otêlê hate nik min û ji min re got ko polîs digerin û ji xelkê re didin zanîn ko saetkê berî saetkê terka bajêr bidin; ji ber ko ordiwa sor berî hatina fenlandiyan wê bajêr bişewitîne. Hingê min zanî ko ev dû û dûman û ev teq û req ne ji topên dijminan e; û ordiwa sor dest bi şewitandin û hilweşandina bajêr kiriye.

Ji otêla xwe rabûm û çûm daîra eskerî. Ji hevalên me sisê li wê derê bûn. Min ji wan zanî ko eskerê ûris li nîvê şevê wê ji bajêr bikişe, lê beriya ko terka bajêr bide wî welê xerab bike ko kuçek li ser kuçekî nemîne.

Hakimê eskerî gote me ko ehalî tev de wê ji bajêr derkevin. Lê herçî em rojnamevanên biyanî; bi dilê xwe ne, heke me divêt em dikarin bimînin. Me jî qerara xwe da ko em heta dawiyê tê de bimînin.

Gava em ji daîra hêkim rabûn me riya xwe bi stasyona rêbesînê xist. Mehşer, jin, zaro, pîr, ciwan, ser hev dikirin ko ji hev derkevin û xwe bigehînin trênê. Bi zor me ji xwe re riyek vekir û em tê re derbas bûn. Kûçe û kolanên din jî welê tejî bûn.

Saet bû heft. Topên keleba bajêr, li ser hev, deh derb berdan û xwe lal kirin. Ez û hevalên xwe em di daîra belediyê de bûn. Em bilkişiyan serê banê belediyê. Tiştê ko me dît temaşake ecêb bû. Dû û dûmanê bi ser vîborgê de girti bû. Di wê perda reş re zimanine sor dihatin der û ber bi ezmanê heşîn ve bil dibûn. Depoyên benzîn û her texlît ardiwan û seraya hikûmetê wek elbikên kerton disotin û dibûn xwelî. Di tariya şevê de avahiyên Vîborgê wek bizotine stûr û bilind dixuyan. Ji daîra belediyê pê ve her der dişewitî, her tişt bû bû agir û dûman. Taxa belediyê dihiştin dawiyê, ji ber ko eskerên ko bêj li bajêr bûn ewê di vê taxê re derketana.

Me xwest ko em dakevin kûçan û di dora şewatan de bigerin. Ji me re gotine ko piraniya kûçeyên bajêr lexemkirî bûn û hebû ko em pê li wan bikin û beriya eskerên fenlandiyan wan ber hewa bikin.

Saet bû yanzdeh, agir heta bi zikê bajêr keti bû. Ter û hişk tev de dişewitîn. Esker hêdî hêdî ji ber dikişiya û terka bajêr dida. Memûrên belediyê ji me re gotine ko saet dwanzdehan de eskerên paşîn jî wê ji bajêr derkevin. Ji lewre diviya bû em jî tevdîra xwe bibînin. Me ji ya wî kir û me da rê. Riya ko şanî me dan tê de lexem nîn bûn. Bi rê ve hevalekî me dil kir cîxarekê berde. Beresteyê wî pê ne ket. Bi me re jî kibrît peyda ne bû. Hevalê me cîxara xwe vegerand elbika wê, li bajarê ko wek daristaneke hişk dişewitî, fedikirî û got:

— Qeder ! emrê vê cîxareyê jî emrê vî bajarî direjtir e.

HESENÊ MISTÊ

---

barkêş û yên rêwingiyan nikari bûn bikevin behrên ko tê de şer çêdibe. Qanûneke emêrîkanî jê re bend bû, yanî wê ne dihişt ko ew vapor herin wan behran. Dîsa madeke wê qanûnê digot ko Emêrîke nikare vaporticaretên xwe bi çek bike. Reîs Rûzwelt kir ne kir û ew qanûn ji her du meclîsan re daye edilandin. Ji 15ê Çiriya-Paşîn û hir ve vaporticaretên emêrîkanî wê bikarin berin benderên ingilîzî û ewê ji Ingilterê re çek û cebiracanê bibin.

ŞERÊ BEHRÊ — Di meha Çiriya-paşîn de di Behra-spî de şer germ bûye. Di vê behrê de nemaze talyan û ingilîz li hev dixin. Talyan di behra spî re esker, çek û cebirxanê ditînin Lîbyayê. Stola ingilîzî û balafirên wî li vaporên talyanî dixin. Di nîvê vê Çiriyê de ingilîzan bi ser vaporgefleke talyanî girtin. Di qeflê de deh vaporên barkêş hebûn. Ingilîzan ew her deh jî bin av kirin. Ji van pê ve ji stola ko qefle dihemend çar bertopiyor

( Dawiya Rewşa Dinyayê di rûpelê 13an de ye )

# AGIRÎ

Çi gava çavên xwe digirim û berê ramanên xwe ber ve welêt diguhêzim, bê hemd navçavên Çiyayê Agirî ên bilind û pirberf tên ber çavên min.

Ew Çiyayê ko bi destê şîna Xwedê di bakurê welatê min da wek pandîgehekê hatiye daçikandin û ji ba û bager, berf û bilêk û mij û dûmanê vala namîne.

Ew Çiyayê ko, dem bi dem ji gelên doraliyê xwe ra, her carê bi awakî bûye qiblegah; îro ji di dilê welatparêzên kurd da ciheki bilind û zirav ji xwe ra girtiye. Eger di babiliskên kevin da bû bû argûna agirê zerdeştiyan û qada dêlindêzên wan, îro jî dîdegaha gelê kurd e. Ji ber ko di nav kuç û zinar, best û şikêr, pal û kûntarên xwe da; bi hezaran hestiyên şerkerên kurd vedişêre. Ji lewra rûmeta wî ya îro ji ya dih ne kêmtir e.

Eger zerdeşti ji bo parastina canê xwe bazgûri bilindi û guraniya agirê navçavên wî dibûn; şerkerên kurd, ji bo serbesti û azahiya welateki binpê û mileteki bindest ywîna xwe di bilindcihên wî da rijandin; û bi vê yeka han, rûmeta wî mezin û navê wî bilind kirin.

Car caran tê bîra min ko bi zaravayekî lavekar bi landika şerên welêt Çiyayê Agirî ra bipeyivim. Bipeyivim da ko daxwaza xwe jê fêr bibim.

Ev çiya ne wek çiyayên mayi ji kevirên pir bibevketî ye! Wî zeman zeman lavelavên pir mirovên wekî min ên derdimend bihîstine. Çiqas ko cihaba wî ne bi dev û ziman e jî, teqez dilê bazgûrbûyan ji ronahiya rastiyê bê par nabêle.

★ ★ ★

Çiyayê bilind! Ji çend salan, te birek hevalên canecan û mêrxas hebûn. Ma gelo, haya te ji wan heye?

Ew hevalên ko, li nik wan parastina te, serbestî û azahiya welêt bû. Heyîn û rûmeta xwe û welatê xwe di navçavên te ên bi berf da didîtin. Ji bo parastina axa te, bi comerdî xwîna xwe dirijandin... Bê şik pirê wan ji te veneqetîn; axa te a çak bi xwîna xwe a paqij avdan. Îro jî bestiyên wan mêrxasan di best û şikêrên te da bayên hênik li xwe dixin.

Yek jê Birho, tevî xurtî û piraniya neyar û rûbadana bext, nikari bû dev ji te berde. Herwekî ji te ra sond xwari bû, diviya bû gotina xwe bîne cih û dest ji te neke. Te ji bi comerdî di navderza pişta xwe da (1) gorek dayê. Çiqas ji Birho ra ew ax bi qasî bihuştekê hêja ye; ji te ra ji, di pişta te da razana şêrekî weke Birho hêja ye. Çi cihekî baş û pandiyekî mêrxas...

★ ★ ★

Ma gelo tu zanî ko çi li Ferzende qewimî? Na, belkî ji tu nizanî. Çima ko qederê ew şêr bê daxwaza wî ji best û şikêrên te bi dûr xist. Ew mêrxasê ko herdem para neyaran di dest wî da mirin bû; bi bêbextiya hin destên gunehkar, bê teq û req, şin û şîwan çû! Çûyîneke welê ecêb ko, di dema mirina xwe da ne li pişt xwe yar û ne ji li xwe neyar ne dîtin.

Roja ko şer giha kûntarên te û neyar qelaçeya wî bi cih kir, hingê tu bi xwe hêrekerê mêraniya Ferzende bûyî. Wê rojê neyar sed û sî guleyên topan li kozika torinê Hesenan da bûn û şeş birinên xedar di ran û parsûyên wî da vekiri bûn. Roj niziki êvarê bû ko bi hikmê topan qûça ko qelaçe li ser bi carekê ser û bin bû. Toz û dûman di qelaçeya Ferzende da wek ewrekî gewr radibûn û li kûntarên te belav bibûn. Mirov bawer ne dibûn ko di nav wê birkana êgir û dûmanê da tinawir bimîne. Lê Ferzende, wekî şêrê ko di hewingê da bi birîn dibe; hin nih dest bi halan û zirtan dikir.

Wê gavê hevalan digot ê: «Ferzende! neyar cihê te nasiye û birînên te xedar in, rabe em hineki te bi şûn da bibin». Ewî bi dengê xwe ê box li wan vedigerand: «Mala we ne ava, ma hon çawan qail dibin ko neyar bêje: Ferzende rû bada!... Ma hon nizanin ko mêrxasên mala Emer ji me torinên malbatê ra riya revê venekirine. Şerên Ava - heftreng (2) û Mêrgekulavê hin di bîra min da ne. Lêdin û neyar serwexti halê xwe nekin. Mirin jî bi camêrî xweş e».

Ev pandiyê te ê mêrxas, di keleha Xoyê da beri du salan hate jehirandin.

★ ★ ★

Di hevalên te ên xweya da bi tinê serdarê şerkerên kurd sergevazê bilindcihên te fermandarê me ê bi roni maye. Ew ji ji yanzde salan û vir da di nav lepên eceman da nikari bû tev bigere. Lê bêhneke bi tinê wî tu ji bîr ne kiri û nake. Wî hergav, çav li kêseke bi havil e, da ko weke berê mêrxasên kurd li serê xwe bicivine û di navçavên

# MOSKO

## ASÊGEHÊN PAYÎTEXTÊ BOLŞÊVÎKAN

Ji didowê Çiriyê a pêşin ve elmanan dest bi êrîşeke nû, kiriye û vê carê berê xwe daye Moskoyê, payîtextê ûrisan. Dibêjin ko ûrisan dora payîtextê xwe gelek asê kirine û wek xeta frensizan a bi nav û deng Mejîno, xeteke xurt di dora wê de anine pê.

Di nîvê Tebaxê de serfermandariya ordiwa ûris rojnamêvanên biyanî ezimandine ziyareta wan asêgehan. Nûyork Hêrald Tribyûn di vê babetê de mektûbeke mixabirê xwe yê Maskoyê belav kiriye. Mixabir di mektûba xwe de wesfê asêgehên Moskoyê dide û dibêje :

— Timobîla kulnêl Polyof ya ko em lê siwar bû bûn, di ber û di nav zeviyên heşin re derbas dibû, diçû. Ew zevî bi xêra sê çemên ko ava xwe dirijînin wan, her û her û salê pê de kesk û heşîn in.

Pişti saetekê, timobîla me gihaşte gundekî nû û spehî. Em ji Moskoyê 60 kîlomêtirî bi dûr keti bûn. Di xaniyên vî gundî de zabit cih bû bûn. Di vî gundî de em hineki sekinin, kulnêleki li wesîqeyên me nihêrt û paşê destûra me da Timobîla me ji nû ve bi rê ket. Her du aliyên rê bi darên ekeliptos xemilandi bûn.

Timobîla me li ber siha darekê sekinî. Kulnêl Polyof xwe zer kir û peya bû. Me jî da pey. Em gihaştin deriki; û bêi ko em li wî din, derî vebû. Ji ber ko didevanên binerdê hatina me diti bûn. Derî nizim bû, me xwe xwar kir û em tê re derbas bûn. Pişti du gavan deriyeki din ket pêşiya me. Paşê yeki sisiyan. Em di wan re jî derbas bûn û ketin hundirê asêgeha zêrzemînî. Me digot, qey em ketine hundirê noqarekê yanî vaporeke ko di bin behrê re diçe.

Belê ûris dora payîtextê xwe kola bûn û li bin erdê bajarek çêkiri bûn. Gava em ketin hundirê wî bajarê binerdin berî her tiştî çavên me bi dûrebîneke mezin ket. Dîwar ji hemî qul bûn û di wan qulan re devê mîtralyozan derdiketin derve û li çolê dinihêrtin. Di ber û di tanişta me re hin zabit û esker diçûn û dihatin. Min dil kir ko bi wê dûrebîna mezin fedkirim derve. Destûra min dan. Min ji bin erdê rûyê erdê weke xwe didit û tiştên ko min bi rê ve ne diti bûn, niho çavên min bi wan jî diketin.

Ji vê istihkamê em derbasî istihkameke din bûn. Her du îstihkam qulêrî hev bûn û di navbera wan de neqebeke girti hebû. Îstihkama didowan ji ya pêşin meztir bû. Dîwar bi resmên Stalîn, Voroşilov, Bûdyenî, Timoşênko, Gedanof û Melotof xemilandi bûn.

Çavên me bi gremefon û radyokê ketin. Kulnêl gote me ko esker di vî bajerê bienerdîn de mîna xelkê ko di zikê Moskoyê de ne dijîn, û kêfê dikin.

Îstihkamên binerdîn li pey hev digihan êk. Zabitê ko bi min re bû got ko di dora Moskoyê de bi vi awayî yanî di bin erdê re 400 kîlomêtir çarçik îstihkam hene. Kulnêl pirsa xwe pêş ve ajot û got :

— Erdê ko hon tê re hatine tev de îstihkam in; binê wan erdan ji top û mîtralyozan tijî ye. Bi dûrebînên ko hon dibînin nobetdarên me dijmin ji dûr ve keşif dikin. Topên istihkamên pêşin dikarin di deqîqê de (10 000) gule berdin dijmin. Heke dijmin ew îstihkam xerab kirin îstihkamên din bera wî didin. Herçî tang in emê bihilin ko ew heta 500 mêtirî nîzingî me bibin û paşê bi guleyên pênc sed kîloyî emê li wan xin. Heke dijmin gaza jehrîn istîmal kir em jê jî natirsin. Ji ber ko istihkamên me welê hatine çêkirin ko bi şixulandina baweşinan tê de hewa zûka têtê guhartin. Heye ko istihkameke me bikeve destên dijmin. Ev ji ne xem e. Ji ber ko îstihkameke din li pey wê ye û divêt dijmin ji nû ve xwe pêk bîne û dirêjî îstihkama didowan bike. Ev jî işeki zehmet e.

Yekî ji me ji kulnêl pirsî :

—Elman dibêjin ko xeta Stalin di çend cihan de şkênandine. Ev çi xet e ?

Kulnêl kenî û got :

— Li Rûsyayê xetek wek xetên Mejîno û Zîgfrîd nine. Serfesmanderiya rûsî, bi tenê di hin cihan de tabiye dane kolan û zeviyên torpîlê çêkirine Herçî riyên ko diçin Mosko û Lênîngradê û bajarine din en mezin û riyên

---

te ên bilind da ala kurdî u rengîn daçikine...

Teqez vê carê, bi tinê bi wê ji nasekine; û wê pişta xwe bide le û dirêjî neyarên welêt bike.

Çiyaol bizan, şerê xelasa mileteki heye ko bişekine lê ew beriya xelasiya wî mileti naqede, dom dike . . . Pêş de diçe . . . .

OSMAN SEBRÎ

---

[1] Ji goreyî ko min ji devê şerkerên Agiryê bihîstiye, gora Birho di nava herdu Araratan di palekê da ye.

[2] Şerên Ava-heftreng û Mêrgekulavê di Serhedê da bi nav û deng in. Di van şeran da lorinên Husenan meraniyên ecêb kirine.

# SÎNEMA

## DI ŞERÊN FLANDR Û DINKERKÊ DE

Di şerên berê de tarixê bûyerên şer dinivîsandin û dihiştin nifşên ayendê. Lê di vî şerî de tarix van bûyeran dinivisine û resmên wan jî dibe. Bi vî awayî nifşên ayendê bûyerên vî şerê bêeman û xwîndar di kitêbên tarixê de wê bixwînin û li ser perda sinemê a spî de jî bi çavên xwe û weke xwe bibînin.

Yek ji van sînemageran biserhatiya xwe bi awayê jêrîn qise dike:

— Li 10ê gulanê sala 1940î min ji serfermandarê ordiwa ingilizî ya Ferensê izna xwe xwest ko ez derbasî Belçîkayê bibim û sûretên şerê wî welatî bigirim. Ewî izna min da û bi çend hevalan re ez derbasî Belçîkayê bûm. Xelkê Belçîkayê derketî bûn pêşiya eskerên ferensiz û ingilizî yên ko hatî bûn hawara wan; silav li wan dikirin û çepilkan li wan dixistin. Min resmê vê nimayîşê girt û pê devê kemêra [1] xwe, vekir.

Roja din em gihaştine bajarekî bimberdimankirî. Berî bi rojekê balafirên elmanî ew bajêr da bûn ber bimban. Min li hire jî çend resim girtin. Menzereyine ziz û elemnak. Di alikî de jinikeke Iingbirî, li darûbestê siwarkirî, qaîl ne dibû here xestexanê, da bû ber qîran û dixwest kurikê xwe bibîne; kur'kê ko eskeran cendekê wî ê hûr û cemidî ji bin riknên bilweşiyayî derdixist.

Derketim derveyî bajêr. Min li erdê balafireke elmanî dît û dil kir ko resmê wê bigirim. Min nîzingî lê dikir, eskerekî belçîkî gote min ko di van balafiran de carina bimbeyên siwarkirî hene ko piştî ketina balafirê ko digehin birên pêtrolê bi vi awayî torpilkirî ne.

Îcar min gote kulnêl ko frensizan di sala çilî de keriyên berazan berdu bûn zeviyên torpîlê û bi vî awayî torpîlên elmanan beriya êrîşa esker ji berezan re da bûn teqandin.

Kulnêl dîsan kenî û got:

— Belê me hay jê heye. Lê ji zeviyên me yên torpîlê bihneke welê nexweş radibe ko beraz ji jê direvin.

Me roja xwe di nav îstihkamên Moskoyê ên binerdîn de qedand. Di vegerê de min ji timobîlê temaşa çolê dikir û di bin her dar û keviri de qey topek an mitralyozek didît ».

DILAWER ÇARPÎNE

bi mideki nenas diteqin. Ez jê bi dûr ketim.

Li 13ê gulanê em gihaştin Brûkselê payitextê Belçîkê. Me şevekê rahet û bi sikûn derbas kir. Sibetirê hevalekî me dawetek çêkir û waliyê bajêr ji lê ezimand. Em li ser taştê bûn. Işareta talûkê hate dayin û beriya ko em xwe bigihînin sirdaban balafirên elmanî bimbeyên xwe bera bajêr dan. Min nemerdî ne kir û digel kemêra xwe derketim şehnişînê, da ko sûretên balafir û bimberdimanê bigirim. Balafirên dijmin bi sê refan lêk vebû bûn. Bimbeyên texrîb û şewatê diketin ser taxên bajêr û ji her derê toz û dûman, pêt û agir radibû û mirin li bajêr belav dibû. Min çend sûretên din jî girtin.

Piştî nîvro em ji Brûkselê rabûn û me berê xwe da Lovanê. Bi rê ve em rastî qefleyên derketiyan dihatin. Hin bi rê, hin bi zeviyan ve diçûn. Kemêrê halên wan ên perîşan jî li ser filmê sekinand.

Menzera ko kemêrê di deriyê bajarê Lovanê de girt bawer bikin ez wê menzerê tucaran ji bîr nakim. Pîrejinekê zarokek kiri bû himbêza xwe, yekî din li pişta xwe a xûz siwar kiri bû, didowên din jî ew ji dawê girtî bûn û xwe jê re didan kaş kirin. Rê ji timobîl, metosikl û ereban tijî bû. Herkesî ji ber mirin û kuştinê baz dida. Di vê navê de mitosikla keçikekê, nizanim çawan bû, li pîrejinê da. Jinik digel barê xwe ê giranbeha li erdê pehin bû. Em tev de ber pê çûn. Jinik ji ling û ji rûyê xwe birîn bû bû. Zarokê ko di himbêza wê de bû mitosiklê pê lê kiri bû, serê zarokekî din li kevirekî ketî bû û mejiyê wî hatî bû der. Ji her du zarokên din, lingê yekî şikestî bû, ê din sax bû, tu tişt pê ne hatî bû.

Herçî keçika ko li mitosiklê bû zû ji erdê rabû, ji piyan sekinî û li vê mezera kuştarê, bi çavine bel û heyirî, wek yeke ko eqlê xwe winda kiriye û dîn bûye, dinihêrt û destê xwe di ser eniya xwe a xwêhdayî dibir û tanî.

Yek ji timobîlên ko di ber me re derbas dibûn, sekinî. Me her du cendek û her du birîndar û lawikê sax lê siwar kirin. Me ji xwediyê timobîlê zanî ko kûçe û kolanên Lovanê ji cendekan tijî ye. Me da pêş û em gehiştin bajêr.

Li Lovanê me seh kir ko elmanan nîzingî li bajêr kirine û belçîkî jê dikişin. Lê belçîkî beriya ko jê bikişin, dikirin pira ko li devê bajêr bû berhewa bikin. Min di dilê

[1] Mekîna fotografê ya ko pê resmên sînemayê têne girtin.

xwe de got; nabe ko kemêra min vê firsendê ji dest bide.

Kumandarê belçîkî şîret li min dikirin û digot ko di vî îşî de talûkeke mezin heye. Min ew talûke da bû ber çavên xwe. Ez ji bajêr derketim û ber bi pirê çûm. Zabitek lê bû. Min pê re da û stand û zanî ko wî zabitî ev 48 saet in parîk nan ne kiriye devê xwe. Dîsa zabitî gote min ko dînamîtên ko xistine ling û kevaneyên pirê bi qîmeta hezar zêrî bûn. Bi texmîna wî zabitî elman ber bi êvarê wê bigihîştana pirê. Wext jî nîvro bû. Ez vegeriyam bajêr da ko çend sûretên din jî bigirim.

Êvarê ez dîsan hatim ser pirê. Topçiyên belçîkî tavêtin elmanên ko dirêjî bajêr dikirin.

Zabitê ko pir berhewa bikira ez bi şûn de vegerandim û gote min, ji sed mêtrî bêtir nîzingî pirê mebe. Min kemêra xwe li wê derê daçikand û ez bi xwe hinekî din bi şûn de kişiyam.

Zabitî işaretek da min. Min jê zanî ko zabit fitîla dînamîtan vêxistiye û ji min re dide zanin ko divêt hinekî din jî xwe bidim paş. Qederê deh mêtiran min xwe da paş. Erd di bin lingên min de hejiya, stûnine reş ber bi ezmên rabûn û lê belav bûn. Bê hemdê xwe gaveke din bi şûn de vegeriyam. Wê gavê ez ji mirinê xelas kirim. Ji ber ko cihê ko ez lê bûm bi rakirina lingê min qelişî û erd vebû, pêşiya min bû hevraz. Lê kemêra di cihê xwe de bû; her tişt cem xwe û weke xwe girtî bûn. Elmanan dikir ko bikevin bajêr. Roj çû bû ava, zerahiya ezmên a paşîn di tariya şevê de winda dibû.

*
* *

Ez di bin barana bimbe û gulan de di navbera xetên belçîkî û Dinkerkê de diçûm, dihatim. Carekê du balafirên elmanî bi ser timobîla min de girtin, mitralyozên xwe li me girêdan. Şiforê min hate kuştin, timobîl wergeriya lê ez xelas bûm. Carekê jî perçekî gulê li zendê min ê çepê ket û ez birîndar bûm û vegeriyam Ingilterê. Qederê deh rojan li mal mam.

Di dewiya Gulanê de û piştî şikestina ordiwa belçîkî eskerên ingilîzî ji Dinkerkê diketin vaporan û vedigeriyan welêt. Diviya bû ez herim û sûretên vegera ordiwê bigirim.

Ji Ingilterê ketim vaporeke kevin û min berê xwe da Dinkirkê. Beriya Dinkerkê bi saetekê mijê rûyê behrê girt û her tişt ji ber çavên me winda bûn; ne bej, ne vapor, ne esker.... Bi sibehê ve me nîzingî li Dinkerkê kir lê fermandariyê ne hişt ko em bikevin hundirê benderê; ji ber ko balafirên elmanî bê etlahî li benderê dixestin.

Zabitekî gote me ko şevêdi 300 balafirên elmanî, bi fikra ko komên eskeran in, li girên qûm yên ko li nîzingî benderê ne xistî bûn. Di vê navê de birekî esker bi selematî li vaporan siwar bû bûn.

Bimberdiman heta rohelê dom kir. Carê ko bimbe diteqiyan vapora me bi ava behrê re dihejiya. Gava bimberdiman sekinî destûra me dan û me nîzirgî li bejê kir. Bi me re bi sedî vapor, qayiq û her texlît filûqe nîzingî li bejê dikirin da ko esker li wan siwar bibin. Min çend caran sûretê vapor û siwarbûna eskeran girtin.

Lê vê carê siwarbûna eskeran li vaporan bi selematî ne çû serî. Dema ko eskeran qesta vaporan dikir û bi sedî peya xwe avêtî bûn behrê û bi melevaniyê diçûn vaporan ewir şeqitîn û balafirên elmanî xuya kir; û vapor dan ber bimban û mitralyozên xwe li eskeran reşandin. Esker tevlî hev bûn û bi hev ketin. Min digot qey di bin vê barana hesinî de kesê zindî ne maye û bender ji cendekên eskerên ingilîzî tijî bûye. Kemêra min dixebitî û ji min çêtir didît û digirt.

Piştî ko hemle qediye û toz û dûman belav bûn; min dît ko esker weke berê û ji nû ve qesta vaporan dikin.

Balafireke elmanî ket nizingî vapora me. Me yek ji balafirvanên wê xelas kir.

Gava vapora me terka Dinkerkê dida bender û bajar dişewitîn. Kemêrê ew resim jî girtin ». EVDIREHMANÊ ROJKÎ

JI MEMÊ ALAN :

## LEHÎSTIKA ŞETRENCÊ

Min bihîstiye ko Lêzgîn axa dike Memê Alan digel tercimeke frensizî belav bike. Dîsan bi gubê min ve kirine ko bi axê re herçend gelek guharto hebin jî di tiwan de strana lehîstika şetrencê nîne.

Ji xwe kêm dengbêj û stranvan hene ko pê dizanin. Dî nav kaxezên xwe ên kevin de ez lê geriyam û minhoke peregende bi destê min ket. Heye ko ev minho ne tişteki tekûz û bi ser û guh e. Lê heke axê kêm û nîvcobûnê di ser nînbûnê re girt divêt ev minho bi kêrî wî bêt.

Ez wê pêşkêşî axayê xwe dikim. Ew bi kêfa xwe ye. Girtin û ne girtin her du jî jê re bêminet in.

Sibehî mîrê min rabû, berê xwe da derizanê
Di ber xulaman re derbas bû hate diwanê

Rûnişte ser textê mîrên Cizîra Bota
Ser textê gewherkirî, zîvîn, zêrhelî
Lêva xwe hema şil kir, bi çaya fîncana ferfûrî
Go sifrê rakin, dilê min naçe tu xwarin û tu xwirînî.
Mîr ne kir banî xulaman, li hisabdaran jî ne pirsî
Lê kesî ne wêrî bû here balê,
Dizanîn mîr bêmad e, mirûzdayî
Xwe dan alî û tev de rabûn ji heywanê.
Taliyê berdevkekî kal û bi xatir,
Ji hindav de rabû, bi hafê ket axir.
Qelûna mîr dagirt, pereng berda ser, agir veda;
Li dorê ľedkirî, dest da balgiha, kuxî, kir ne kir
Mîr xwe tev ne da, û poz pê ne kir.
Kalo li xwe ma ȟeyirî, pêlepaş çûye der;
Nik xulaman hate ve, bê deng û lal, xwe kir ker.
Xulaman jê pirsî, gote wî mamo!
Ma mir tiştek ne gote te ?
Mifirdî dey ne kir, serî hêjand, bi lalî gote no.

***

Mîr texmîn dikir, texmîneke giran, gelek damayî;
Derdan serî da bû, ew û xemên xwe şevê pê de nerazayî
Dihatin bîra mîr tiştên dihî û pêr û ên mayî.
Ma Mem çire bi mîr re ne çû bû rav û nêçîrê
Li bajêr ma û dema mîr hat, bi zilaman ve, ji derî da;
Torinên Çizîra Bota tev de rabûn ji ber wî va
Bi tenê Memê Alan ji cih ranebû xwe qet tev ne da.
Li erdê ma perişan, hewranî li xwe badayî.

***

Beko, Bekoyê awan, seypesanê mirekên Bota
Ji derve, li pişt derî, sekinî
Wî jî texmîn dikir, awa awa.
Heçko dilê mîr xwendî bû, go firsend e aniha.
Bi pabûsî kete hundir, gote mîr, mîrê min ezbenî
Ma meqsûd ne ew bû em vekin qûtiya dila.
Bila herin ba kin, ji bilî hevala Mêmê Ala
Ji min zêde be jî ez bibêjim, ez bendeyê mîr im.
Tecrîbe ke pê re bide bistîne,
Kirasê wî şil ke rake, bide ber tavê.
Qet bermede hilîne, deyne, biwestîne heta dawî
Tiwê her tiştî bibînî bi vî çavî.
Bi awanî digo Beko, hema tu zora wî bibe. Işê te pê nîne.
Beko danî hilanî, devê xwe bir û anî, şîret li mîr kirin.

Mîr ev şîret ditine rast, gote xulam û pîşekaran
Herin tenha ji min re gazî kin Memê Alan
Lê guh bidin, xeber neçit Tacîn û her du biran
Min îro navê bêne ȟafa min çi kurmam û çi pismam.
Cila bibin ȟewşê, raxin, lêhistika şetrencê bidin navê.
Vexwînin herçî begler û axa giragir û torinên Bota.

***

Roj dihate taştiya, tavê dida bedena Birca-Belek
Mêvanên mîr dihatin tof bi tof û yek bi yek.
Memê Alan bi dilxweşî hat û kete civatê
Memî digo, mîr di min borî
Herçî qisûrên min hene dane ber lingan
Ji xwe adet jî ev e, cem mîr û mezin û hakiman.

***

Mêvan rabûn ji ber sifra parêv û medfûnî û arok
Hina qelûn dikişand, hina jî guh dida çîrok
Mîr gote Memî, mêvanê min î giram û hêja
Min dil heye îro ez bilehîzim bi şerta
Eve şetrenc, kerem ke rûne pêşmiqabil
Şertê min ev e, yek e, sivik e, heçî şikest
Xwe bispêre lêvok û belengazê min.
Ewê pê re, bi kêfa xwe, ȟenek û yarîkê bike.
Memî go li ser sera ezbenî herçî emr û fermana mirê Botan e
Rabû, hat, rûnişte ber şetrencê, rêz kirin şah û fil û ferzin
Mem lehizvanekî zor bi, lê Mîr pê ne dizanî
Mem û Mîr herwekî biçûna navê hevdû gerandin
Temaşageran zanî xurt e, Memê Alan
Mîr Ezîn nikare hilîne bar û berbarî
Bi rimh û gurz û şeşperî, Mem kete nav eskerên mîr
Sefa pêşin xera kir di baskan ve kete hundir
Siwar ji hespa de xistin, peyar dan ber lingên fila
Bera birc û barû da pêşi ji dijmin stand
Li şah hate wer, rex û ferzîn kirin hêsîr
Beko madê xwe kir dî fena wî derkete pûç
Mem tu firsend ne da, pey hev ji mîr birin sê dest
Beko dî îş xerab e, mîr dişkê bi Mem re maye serdestî.
Ewî soz da bû mîr Mem bigre, lê bi bindestî.
Çavê Beko bi Zînê ket, Zîn li ber pencerê rûniştî

Di paş Mem re, ji jor de, berê wê li mîr, hewşê difedkirî.
Beko kenî, pê şa bû, gote mîr : mîrê min ezbanî,
Di lehîstikê de siûda mirov carina bi cih têt;
Ji lewre divêtin Mîr û Mem cihên xwe bi hev din.
Bila Mem here şûna Mîr, Mîr li şûna wî rûnit.
Lehîzvanan cihên xwe pev guhart
Mem hat pêşberê dildara dilovan, lê çav pê ne kir
Beko dîsan rabû devê xwe vekir, gote civatê :
Divêt birca me birceke kevnare be, neqşine ecêb lê ne.
Memê Alan bê hemdê xwe serê xwe rakir, li diwêr fedkirî
Çavê dildayî kete çavên dildarê
Eqil terka serî da, hiş ji dil rabû, can ji ten bû, çû firî
Destên Memî di ser textê şetrencê re diçûn dihatin
Lê Mem êdî nezanî lehistik çi ye? Mîr çi dike nake
Fîl û hespên xwe didan bê hay, şûna segman û peyan
Bi derbine nelê diket beynelê; ferza wî dibû hêsîr
Peyarên Mîr hespên wî digirtin wek hêstir û bergîr.
Beko digo mîrê min ezbenî, min ne go lehîstik siûd û cih e.
Mîr Ezîn bawer dikir, kêfa xwe tanî, dida kiş û berkişa.
Pir ne ajot zora Memî çû, mîr şeş dest jê birin
Xulam û pişekaran şetrenc û texte ji navê rakirin.
Mîr destûr da, herkesî berê xwe da derîzanê;
Mîr jî çû banî, aliyê malê.

* * *

Civat belav bû, hewşa qesrê li wan ma xir û xalî
Zîn ji li banî, ji pencerê xwe da alî
Beko rabû, nîzingî li Mem kir got ê, şahzade
Li gora şertê te û mîr kerem ke dest û lingên xwe berde.
Memî go bila be; ez bibînim çi ye yariya te
Beko çû werîsek anî dest û lingên Mem pê girêdan.
Mem rabû, xwe ji cih hinek tev da
Werîs bû piç û parî, ji hev de ket qetî
Vêga Beko kete binaniya bircê zencîzek anî
Memê Alan dîsa dey ne kir dest û pê sist kirin, berdan.
Beko mêvanê xwe pihêt girêda xelek û girêk li hev badan
Mem bihnekê damayî ma, qey pêtek ji devî derket, pê pif kire zencîr.
Hesin sor bû, helî, herikî, ket erdê bû mareki fêris
Beko ji ber mêr revi, xwe da alî, xwe kire pis
Mem kenî, fîkand, nehwirî, mar tevizî, berê xwe da banî
Mar kete quleke bircê, Beko bihna xwe da li ber Mem gerî.
Beko dikir lavelav, digote Mem: ezbenî
Ma kengê ez bi te karim, divê tu rê bidî min
Mem di eqlê xwe de digot qey tev henek û yarî ye
Memî gote Awan, kuro here stewlê çend mû ji dêl û bijiya Boz bîne;
Çend mûyên serê min jî bigire û min pê girêde.
Bi wan mûyan dilê min ji bir ve diçe saetkê ez dimînim bêhiş.
Beko nemerdî ne kir, mûyên Boz anîn çendek ji ji serê Mem rakirin
Mû li hev ba dan, kirin benekî zirav û tenik
Tilî û pêçiyên Mem pê girêdan
Mem xwe tev ne da, cemidî, bêhiş, bû barekî sivik
Beko bi tirs lê fedkirî, li vî halî ma ecêbmayî
Xeyala mêr hate bîrê, cendekê Mem rakir, revî
Barê xwe bir binaniya bircê dakir zîndaneke kûr û tarî.

STRANVANÊ HAWARÊ

---

(DAWIYA REWŞA DINYAYÊ)

xeriqandin û du krewzor birîn kirine. Wer dixuye ko krewzorên talyanî dest ne birine xwe û çavê xwe dane revê.

Disan di vê mehê û di Behra-spî de ingilîzan ji keştiyeke mezin winda kir. Ingilîzan keştiyeke balafirhilgir hebû bi navê Erk Rweyel. Elemanan çend caran goti bû me ew xeriqandiye. Lê Erk ne dixeriqî û her û her şerê dijminê xwe dikir. Lê vê paşiyê noqareke elmanî di nizingî Cebeltariqê de û bi torpîlekê Erk Rweyel bin av kir. Erk Rweyel 27000 ton mezin bû û qederê 70 balafir hildigirtin û topine mezin lê hebûn.

ŞERÊ EFRÎQAYÊ — Herwekî me berê jî got, bi honikbûna dinyayê diviya bû şerê Efrîqayê ji nû ve dest pê bike. Ev penc meh in her du aliyan xwe pêk ditînin. Ji ingilîzan re di Behra-sor re ji Emêrîkê bê qeder çek û cebirxane û tang dihatin. Herçî talyan in, wan ji di Behra-spî re qewet û çekine nû tanîn Trablisxerb û Bingaziyê. Lê ingilîzan birekî wan di Behra-spî de bin av dikirin.

Di nav qewetên talyani de divêt hin qewetên elmanî jî hebin.

Li gora danezanên ingilîzî li 18ê vê Çiriyê bi şefeqê ve ingilîzan dirêjî xetên talyanî û elmani kirine û bi derbekê xetên pêşîn şkênandine û qederê 60 Kîlomêtirî pêş ve çûne.

Ingilîzan qeweteke mezin aniye vê eniya şer. Li gora gotina rojnameyên ingilîzî vê carê ingiliz dixwazin talyan û elmanan bajon heta tixûbên Tûnisê û xwe bigehînin erdê frensizan. Heke plana ingilîzan çû serî talyan û elman yekcar ji Efrîqê wê qut bibin. Ji xwe dilxwaza ingilîzan jî ev e.

Li gora danezana ingilîzî ya ko li 25ê mehê hate belav kirin di navbera eleman û ingilîzan de şerine xwîndar çêbûne û xisarine mezin gihane her du aliyan.

ŞERÊ ÛRIS — Şerê ûris û elmanan weke berê bi şidet û xurtî dom dike. Piştî ko dinya bû sahî û erd cemidî elemanan ji nû ve dirêjî Moskoyê kir. Li gora radyowa Moskoyê eleman ber bi payîtextê bolşêvîkan ve dimeşin û rewşa bajêr xeternak e. Ûrisan terka hin îstihkamên nû dane û elemanan nizingî li Moskoyê kiriye.

Lêningrad weke xwe ye. Ûris carina dirêjî xeta elemanan dikin û dixwazin wê xetê di devereké de qul bikin û derkevin. Li gora hin nûçeyan, ûris bi balafiran ji Lêningradê esker ditînin Moskoyê.

Herçî qada nivro, di nîvgirava Kirimê de, li 16ê Çiriya - paşîn eleman ketine bajarê Kerçê û avtenga ko rê dide Qevqasê, xistine destên xwe.

Herçî bajarê Rostovê, li gora elmanan, bajar li 22ê mehê ketiye destên wan. Lê ûris derew bi aliyê vê nûçeyê ve didin û dibêjin ko Rostov hêj ne ketiye destên elemanan û şer di kûçeyên bajêr de dom dike û eleman di rohelatê bajêr de şikeştine û baz dane.

Şam : Çirya - Paşîn 1941 NÊREVAN

---

MAME ALAN

# LA PARTIE D'ECHECS

Les lignes que l'on va lire sont la traduction d'un passage généralement peu connu de la légende de Mamé Alân, et qu'un des collaborateurs de " Hawar" a eu la chance de pouvoir noter.

La "Partie d'échecs" se situe un peu après les divers épisodes dont le résumé a été publié jusqu'ici ( cf. Hawar, No 25 ) : les trois frères Djelali s'étant mis d'accord pour protéger les amours de Mam et de Zin, les jeunes gens parviennent à avoir deux rendez-vous. Cependant, Beko le traître, travaille à la perte de Mam. Ses intrigues sont déjouées à plusieurs reprises. Il persuade enfin à Mîr Ezîn de tendre un piège au héros et de l'empoisonner.

***

De bon matin, mon émir se leva. Il se dirigea vers la galerie.

Passa devant les valets, entra dans le divan.

Il s'assit sur le trône des princes de Djezira Botân.

Sur le trône d'or et d'argent, incrusté de pierreries.

Il humecta seulement ses lèvres avec le thé de la tasse de porcelaine.

Et dit : "Otez la nappe, je n'ai pas envie de manger".

L'émir n'appela pas ses domestiques, il ne s'enquit pas non plus des intendents.

Nul n'osa s'approcher de lui :

Tous savaient qu'il était las et de mauvaise humeur.

Ils se levèrent quittèrent le perron.

Seul, un vieux courtisan, favori de son maitre

Entra dans la salle.

Il bourra le tchibouk de l'émir, mit une braise sur le tabac, tisonna le feu.

Il regarda autour de lui, arrangea les coussins, toussa. Mais il eut beau faire

Le prince ne bougea pas et ne fit pas attention à lui.

Tout perplexe, le vieux sortit à reculons.

Il retourna auprès des valets, bouche cousue, sans piper mot.

Les serviteurs lui demandèrent: "Oncle, L'émir t'a-t-il dit quelque chose ?

Il resta silencieux, hochant seulement la tête pour faire signe que non.

***

L'émir réfléchissait profendément, perdu dans ses songeries.

Ses soucis s'étaient ranimés, il avait passé en leur compagnie toute la nuit sans dormir.

Les événements de la veille, de l'avant veille et des autres jours lui revenaient à l'esprit.

Pourquoi Mam ne l'avait-il pas accompagné à la chasse?

Pourquoi était-il demeuré en ville ? Lorsque à son retour, il avait franchi la porte, accompagné de sa suite,

Tous les nobles de Djezira Botân s'étaient levés en son honneur.

Seul, Mamé Alân n'avait pas bougé, il était resté immobile

A sa place, l'air embarrassé, drapé dans son manteau [1]

*
* *

Bako, Bako le Mauvais, le chien des princes de Botan,

Se tenait debout à l'entrée, sur le seuil de la porte.

Il réfléchissait, lui aussi à mille choses,

Comme s'il avait lu dans le coeur de l'Emir. Il se dit enfin : "C'est le moment !'

Il entra, baisant le sol, et dit à l'Emir: "Je suis ton serviteur :

N'avions-nous pas pour but d'ouvrir le coffret des cœurs ?

Que l'on aille donc mander Mamé Alân et lui seul,

Même si cette proposition est déplacée de ma part, je suis l'esclave de l'Emir

Eprouve-le, cause avec lui,

Mouille sa chemise et étends-la au soleil [2].

Ne lui laisse aucun répit, discute, lasse-le jusqu'au bout.

Et tu verras tout de tes propres yeux."

Bako disait perfidement : "Gagne seulement la partie, je me charge du reste."

Bako discourait, il parlait sans arrêt, prodiguait ses conseils.

L'émir trouva sage son avis, il dit à ses valets et à ses domestiques :

"Allez m'appeler Mamé Alân, et lui seul,

Mais prenez garde que Tadjin et ses frères n'en soient pas avertis.

Aujourd'hui, je ne veux en ma présence ni cousins ni parents.

Portez les tapis dans la cour, étendez-les, installez l'échiquier,

Puis mandez tous les begs, les aghas, les grands et les nobles de Djezira Botan".

*
* *

Vers l'heure du déjeuner, le soleil inondait les murailles de Burdja Balak,

Les hôtes de l'Emir arrivèrent par groupes et un par un.

Mamé Alân vint aussi, tout joyeux, se mêler à l'assemblée.

Il se disait : "L'émir m'a pardonné,

Il a oublié toutes mes fautes,

Suivant l'habitude des princes, des grands et des souverains."

*
* *

Les hôtes quittèrent la nappe chargée de rôti de mouton, de croquettes farcies et de boulettes de viande grillée.

Les uns fumaient leurs tchibouks, les autres écoutaient l'histoire.

L'émir dit à Mam : "Mon hôte cher et bien-aimé,

J'ai envie de faire une partie avec toi, moyennant gageure :

Voici l'échiquier, viens t'asseoir en face de moi.

Quant à l'enjeu que je propose, il n'est que peu de chose,

Le perdant se prêtera aux facéties de mon bouffon,

Et nous rirons de lui à notre plaisir."

Mem répondit : "J'exécuterai volontiers tous les ordres de l'Emir de Botân."

Il alla s'asseoir devant l'échiquier, disposa les rois, les tours et les reines.

Mam était un joueur de premier ordre, mais le prince l'ignorait.

Les adversaires s'attaquèrent avec autant d'ardeur que s'ils se fussent pris à bras le corps.

Les spectateurs comprirent que Mam était fort,

Et que Mir Azin ne pourrait venir à bout de lui.

Mam chargea les troupes du prince à coups de lance, de masse et de massue,

Il bouscula la première ligne et enfonça les ailes,

Culbutant les chevaux, faisant fouler aux pieds les fantassins par ses éléphants [1]

Il attaqua, franchit la muraille et les tours de l'ennemi.

Il encercla le roi, s'empara de la citadelle, fit prisonnière la reine.

Bako faisait triste mine, voyant sa ruse déjouée.

Mam ne lui laissait aucun répit. Il gagna successivement trois parties.

Le traître vit que les choses allaient mal, l'émir se faisait battre, et Mam l'emportait,

Or il avait promis de réduire le héros à la merci de son maître, mais à condition qu'il fût battu.

Soudain, il aperçut Zin, assise à la fenêtre,

---

[1] Mem s'était prétendu malade, pour ne pas accompagner l'Emir à la chasse, et était allé rejoindre Zin au palais. Surpris par le retour du prince, il dissimula Zin sous les plis de son manteau et ne put se lever.

[2] C'est à dire, tâche de découvrir ses défauts.

Elle se tenait derrière Mam, au premier étage, face au prince, et regardait dans la cour.

Bako se mit à rire, tout joyeux, il dit: Mon prince, je suis ton serviteur.

Il arrive qu'au jeu, la chance tienne à la place que l'on occupe.

C'est pourquoi il te faut changer avec Mam

Que Mam prenne le siège de l'èmir, et l'émir le sien."

Les joueurs changèrent de place.

Mam s'installa en face de sa tendre bien-aimée, mais sans l'apercevoir.

Alors, Bako rouvrit la bouche, et dit aux assitants ;

"Notre château doit être fort ancien, il est orné d'étranges motifs."

Involontairement, Mam leva la tête pour examiner la muraille.

Les regards de l'amant croisèrent ceux de l'aimée.

La raison l'abandonna, la vie quitta son coeur, l'âme s'envola de son corps.

Les mains de Mam allaient et venaient sur l'échiquier,

Mais il ne savait plus où en était le jeu, ni ce que faisait l'émir.

Sans y faire attention, il sacrifiait ses élépbants et ses chevaux pour sauver ses piétons.

Il se laissa exposer à l'échec par des coups faciles; sa reine fut prise.

Les piétons de l'émir capturaient ses chevaux comme des mulets et des rosses.

Bako disait : "Mon prince, ne t'avais-je pas dit que le jeu est une question de chance et de position."

Mir Azin le croyait; tout joyeux, il continuait à mettre Mam en échec.

Mam fut vite battu : le prince lui gagna six parties.

Les valets et les domestiques enlevèrent l'échiquier.

L'émir congédia ses hôtes, chacun s'en fut vers la galerie.

Il monta lui-même à ses appartements.

⁂

L'assemblée se dispersa, la cour du palais demeura absolument vide.

Zin s'était aussi retirée de la fenêtre

Bako s'avança vers Mam, et lui dit : "Prince,

Pour payer ton enjeu à l'émir, abandonne-moi tes pieds et tes poings."

Mam répondit : "Soit : Voyons quel est ton gage".

Bako prit une corde; il lia les mains et les pieds de Mam.

Celui-ci fit un mouvement,

Le corde tomba en lambeaux, et se rompit.

Alors, Bako descendit chercher une chaîne dans les souterrains du château.

Mamé Alàn, toujours sans dire mot, tendit doucement ses mains et ses pieds.

Bako lia solidement son hôte, nouant les maillons de la chaîne.

Mam se recueillit un instant, puis, il souffla et l'on eût dit que des flammes lui sortaient de la bouche.

Le fer rougit, fondit, coula, se répandit sur le sol et se changea en un serpent gigantesque.

Bako s'enfuit devant le monstre, tremblant de peur.

Mam se mit à rire. Il siffla, le serpent se fit tout petit, monta,

Puis disparut dans un trou. Bako reprit son souffle et revint vers Mam.

Il se fit suppliant, et dit : "Je suis ton serviteur.

Quand pourrai-je venir à bout de toi ? Il faut que tu m'en indiques le moyen."

Mam pensait que tout cela n'était que farce et plaisanterie.

Il répondit au traître : "Mon ami, va à l'écurie, arrache quelques crins, à la queue et à la crinière de Boz,

Prends aussi quelques uns de mes cheveux, attache-moi avec.

Cela me fera perdre connaissance, et je resterai évanoui une heure durant.

Aussitôt, Bako alla chercher un peu du crin de Boz, il prit aussi quelques cheveux de la tête de Mam.

Il tordit le tout ensemble, et en fit une cordelette mince et fine,

Dont il se servit pour lier à Mam les pouces des mains et des pieds.

Mam resta immobile, figé, sans connaissance. Il n'était plus q'un fardeau léger.

Bako le regarda avec crainte, tout étonné de ce changement.

Puis, il revit l'image du serpent. Alors il souleva le corps.

Gagna les souterrains, et le jeta dans une oubliette profonde et noire.

TAWÛSPARÊZ

# Kitêbxana Hawarê

Hejmar:

1 – Rèzana Elfabiya Kurdî C. A. Bedir-Xan.
2 — Rupelnine Elfabê C A. Bedir-Xan.
3 — Dilê Kurên Min Dr. K. A. Bedir-Xan.
4 — Biyişa Pêxember. Bi Kurdiya dumilî, bi dîbaca C. A. Bedir-Xan
5 — Nivêjên Êzediyan bi dibaca C. A. Bedir-Xan
6 — Mektûb ji Mistefa Kemal paşê re
7 C. A. Bedir-Xan
1 — Mesela Kurdistanê Bazîl Nîkîtîn
8 — Ji mesela Kurdistanê C. A. Bedir-Xan
9 — Elfabeya Kurdî Dr. K. A. Bedir-Xan
10— Xwendina Kurdî Dr. K. A. Bedir-Xan
11— Elfabeya min Dr. K. A. Bedir-Xan
12— Dersên Şerietê Dr. K. A. Bedir-Xan
13— Çarînên Xeyam Dr. K. A. Bedir-Xan
14— Proverbes Kurdes. Medhelokên Kurdî Lucy Paule Marguerille û Emîr. K A. Bedir-Xan Paris - 1937
15— Le roi du Kurdistan. Qralê Kurdistanê. Emir K A. Bedir-Xan û Adolphe de Falgerolle. Paris - 1937
6— Der Adler von Kurdistan. Eyloyê Kurdistanê. Prinz K. A Bedir-Xan û Herbert Örtel Berlin - 1937
17 – Der Schnee Des Lichtes. Berfa Ronahiyê Şihrên Kurdî Prinz. K. A. Bedir-Xan û Dr. Curt Wunderlich Berlin - 1937

---

# Kiryariya Hawarê

| | | |
|---|---|---|
| Salî | 500 Qirûşên | Sûrî |
| Şeşmehî | 300 Qirûşên | Sûrî |
| Sêmehî | 200 Qirûşên | Sûrî |

**Xwedî û gerînendeyê berpirsiyar: Mîr Celadet Alî Bedir-Xan. Şam—Sûriye**
**Directeur Propriétaire : Emir Djéladet Aali Bedir-Khan. Damas—Syrie**

SAL 9
HEJMAR 37
ŞEMBIH
20 KANÛNA-PÊŞÎN 1941

# HAWAR

ANNEE 9
NUMERO 37
SAMEDI
20 DÉCEMBRE 1941

KOVARA KURDÎ ✶ REVUE KURDE

TÊXISTIYÊN VÊ HEJMARÊ



**ŞAM—1941**
**ÇAPXANA SEBATÊ**

SAL 9
HEJMAR 37

ŞEMBIH
20 KANÛNA-PÊŞÎN 1941

# HAWAR

ANNEE 9
NUMERO 37

SAMEDI
20 DÉCEMBRE 1941

KOVARA KURDÎ ✶ REVUE KURDE

## TEFSÎRA QURANÊ

233 - Jinên berdayî heke dixwazin wextê bixwedîkirina zorayên xwe ên herşîr timam bikin, divê wan du salan bimijînin. Rizqê zarok û cilê wî li gora taqêtê li ser bavê wî ye.

Tu kes bi tiştekî zêdeyî taqeta xwe berpirsiyar nabe.

Heke dê zaroyê xwe dimijîne, nabe ko zaro jê bête standin, her wekî eger dê bi mijandina zaroyê xwe qaîl bû, êdî nabe ko jê vegere û ji bavê zarokî, girtina dayînekê bixwaze.

Ko bavê zarokî mir, li ser warîsên wî jî, hikim dîsa ev e.

Heke dê û bav li ser mesela ji şîrkirina zaroyê xwe berî timam bûna du salên mijandinê dişêwirin û li ser mideke jê hêj kurtir li hev tên, ji wan re tu guneh nîne.

Ger hon ji bo zaroyê xwe dayînekê digirin ji we re tu guneh nîne, lê divê heqê wê li gora adet û edaletê bidin ê.

Ji Xuda bitirsin û bizanin ko Xwedê her tiştê ko hon dikin dibîne.

234 — Jinên ko mêrên wan dimirin û bî dimînin, bila ew çar meh û deh rojan li hêviya mehîkên xwe bimînin û di vê dema hêvîdariyê de xwe mexemilînin.

Paşê ji emelên wan weke xemilandin û ziwacê yên ko li gora marûfê ne, ji we re tu guneh nîne.

Xuda emelên we dibîne û dizane.

235 — Heke hon ji jinebiyekê re, di nav çar meh û deh rojên hêvîdariyê de, qesda xwe a ziwacê didin zanîn, an heke hon vê daxwaza ziwacê di dilê xwe de vedişêrin ji we re ne tu guneh e. Xwedê xwe bi xwe dizane ko ev daxwaza hanî di dilê we de ye. Lê bi wan re, bi dizî maxêvin û me din, me stînin, heke bi wan re xeber didin bi dilpakî û camêrî bipeyivin.

Berî qedandina wextê hêvîdariyê dest bi standina wan me kin.

Bizanin ko Xwedê yeşartiyên dilên we nas dike. Ji Xuda bitirsin û ji riya wî a rast averê me bin. Bizanin ko Xuda ji tobedaran re efiw û tobê dide Xwedê dilnerm e.

236 — Berdana jina ko hon nîzîkî wê ne bûne û we mehra wê jî ne biriye, ji we re ne guneh e.

Lê li gora taqet û edaletê bi dayîna tiştekî, qedrê wan bigirin; dewlemend li gora dewlemendiya xwe, belengaz jî li gora halê xwe bila bide. Ev dayîn li camêr û comerdan tê.

237 — Heke hon jinên xwe piştî birîna mehrê lê berî nîzîk bûna wan berdidin, divê ji wan re nîvê mehra vebirî bidin; meger, ew bi xwe an weliyên wan jê bigerin.

Ne standina wê ji teqwayê re nîzingtir e.

Di nav hev de qenc, xatirniwaz û keremkar bin.

Tiştên ko hon dikin, Xwedê dibîne.

238 — Dest bi nimêjên xwe bikin û nimêjên xwe li gora emrê Xwedê pêk bînin û bala xwe bidin nimêja navînê ango nimêja sibehê. Ji bona Xwedê bi dilekî pak rabin nimêjê.

239 — Heke hon di talûkê de ne, û baz didin, bi peyarî an bi siwarî,

nimêja xwe bikin û gava talûke nema; dîsa herwekî Xuda ji we re da zanîn, berê we ne dizanî bû, dest bi nimêja xwe bikin.

240 — Yên ko dimirin û jinên wan bî dimînin, divê berî mirina xwe, ji mîratxwerên xwe re wesiyetê bikin, da ko ew wan jinûbiyan ji mala mêrên wan ên mirî derneêxin û ji wan re salekê nefeqê bidin. Lê heke jinebî, xwe bi xwe ji mala mêrên xwe derdikevin û bi marûfê, xwe dixemilînin an pey ziwacê digerin, Gelî qazî û mîratxwerino... Ji we re êdî tu guneh nîne. Xuda delal û fêris e.

241 — Ji jinên berdayî re li gora camêrî û comerdiyê divê tiştek bête dayîn, ev li ser mirovên bawermend deyn e.

242 — Xuda bi emrên jorîn ayetên xwe şanî we dide ta ko hon bi hikmên di wan bîrewer bibin.

243 — Pêxemberê min, te li wan ne nihêrtiye?.... Ji tirsa mirinê bi hezaran ji welatê xwe derketine. Xwedê ji wan re got: Bimirin... Piştre Xuda ji kerema xwe ew vejandin.

Kerem û qenciya Xwedê li ser xelkê mezin e, lê bêtirê wan şikir nakin.

244 — Di riya Xuda de, dest bi şer û kuştinê bikin û bizanin ko Xuda dibihîse û zana ye.

245 — Yê ko bê minet û rûtirşî di riya Xwedê de arikariya xelkê dike, Xuda ji kerema xwe a mezin vê qenciyê bi zêdahî ji xwediyê wî re vedigerîne. Xuda ji hikmeta xwe hinan çavteng û hinan jî destvekirî dike, qismeta hinan digire, qismeta hinan vedike.

Gelî mirovên bawermend, bizanin ko honê vegerin ba Xwedê.

246 — Pêxemberê min, ma tu pê nizanî? Piştî mirina Mûsa mezinên lawên Israîl gihane hev û ji pêxemberên xwe re gotin: Bila ji me re mîrek bête bijartin, heta ko em bi arikariya wî di riya Xwedê da, bi Calût û xelkê di wî dest bi şer û kuştinê bikin. Pêxemberê di wan got: Ditirsim ko hon paşî vê gotinê bêbextiyê bikin û dest bi şer û kuştinê nekin. Wan got: Ma çawan em dest bi şer û kuştinê nakin, Calût em ji welatê xwe derêxistin û em ji zar û zêçên xwe bi dûr xistin.

Lê gava şer û kuştin li ser wan ferz bû, bextê xwe şkênand, bi tenê cendekên wan dest bi şer û kuştinê kirin.

Xwedê mirovên zalim û bêbext nas dike.

247 — Pêxemberê di wan ji wan re got: Xuda ji we re Talût kire mîr.

Wan got: Ma çawan Talût dibe mîrê me, em ji mîrîtiyê re, bi her awayî jê layiqtir in, ew ne dewlemend e ko arîkariya me bike. Pêxemberê wan got: Xwedê ji mîrîtiyê ra, Talût ji we çêtir girtiye. Xuda Talût kiriye serekê we. Bi zanîn û zexmiya xwe Talût ji we zêdetir e.

Xuda ji kîjkî re dixwaze sererazî û mezinahiyê dide.

Kerema Xwedê mezin e, û zanîna wî kûr û fireh e.

248 — Gava lawên Israîl ji pêxemberê di xwe hiceta mîrîtiya Talût xwestin, wî ji wan re got: Ewê ji we re Tabûtê bîne. [1]

Di vê Tabûtê de tiştine welê hene ko bi arikariya wan tirs nakeve dilê we, hon rahet dibin û mêraniya we dişide.

Û di vê Tabûtê de ji pêmayên malbatên Mûsa û Harûn çend tişt peyda dibin. Milyaket vê Tabûte hildigirin, û bi hatina vê Tabûtê Xuda rastiya gotina pêxemberê we şanî we dide; heke hon mirovên bawermend in...

249 — Gava Talût bi eskerê xwe ve ji bajarê Qudsê derket; Talût ji wan re got: Xuda we bi ava çemekî dê biceribîne. Yên ko ji ava wî çemî vexwar, ew ji min in, û yên ko venexwar, ew ji min in, meger ko mistekê bitenê vexwin, ev ne xem e.

---

[1] Hin dibêjin ew Tabût Sendûqek bû, li gora gotina hinan ew legenekê zêr bû, ji bihuştê hati bû û tê de, dilên pêxemberan dihatin şuştin.

# HEDÎSÊN

## CENABÊ PÊXEMBER

REHMET Û SILAVA XWEDÊ LÊ BE

401— Ko mezinê we ji we tiştekî zêdeyî heq ûinsafê xwest bi xebera wî me kin.

402—Xwedê arîkariya wan mirovan dike ko ji xwe re an jinekê tinin an erdekî beyar dajon û diçinin.

403— Xwedê li mirovên ko bi nekesan re jî comerd in, di sûcên xelkê diborin û dilê xwe li wan vedikin û bi xadim û xulamê xwe re dilbirehm in tê rehmê.

404 — Mal bi danê kêm na be, yê ko di tengiyê de sebrê dide xwe serfiraz dibe û yê ko tiral e, na xebite û hewcedarê xelkê dibe dawî perişan û şerpeze dibe.

405 — Xwedê dibêje ez neyarê sê mirovan im; yê ko bi navê min sund dixwe wad dide û lê diqulipe, yê ko zaroyê xwe an zaroyên xelkê difiroşe, yê ko paleki ji xwe re tine û piştî ko pale xebata xwe diqedîne heqê taba wî nade wî.

406 — Mirov paşgotiniya sê texlît mirovan bike ne heram e :

Paşgotiniya mirovên bêdin û exlaq;

Paşgotiniya hakimên zalim;

Paşgotiniya mirovên ko bi tiştên ko Xwedê û pêxember ne gotine emrî xelkê dike û wan pê şaş û gêj dike.

407—Diayê wan mirovan li ba Xwedê ne meqbûl e : dia mirovê ko di xaniyekî xerab de radibe û rûdine û dibêje : Xudayê mın, ji hilweşandina wî xaniyî min biparêze; dia peyayê ko di rê û kûçan de dinive û dibêje : Xudayê min, min ji tada diza biperêze û dia wî ehmeqê ko heywanê xwe girênade û ko ew baz da dibêje : Xudayê min, heywanê min ji min re vegerine.

408 — Xwedê di roja piştdawiyê de li rûyê sê mirova na nêre û bi wan re na peyive :

yê ko di çolê de ava xwe a zêde na de hewcedaran, yê ko ji bona firotina malê xwe bi derewa sund dixwe û yê ko ji bona kar û xweşiya xwe mezinahiya mirovekî xedar nas dike.

409 — Xwedê li mirovên ko li ber dê û bavê xwe radibin û bêgotiniya wan dikin, serxweş dibin û gava qenciyekê dikin di pişt re qala qenciya xwe dikin nameyizine.

410 — Mirov deynê xwe ne bi diayê lê bi hikmê qazî distîne.

411 — Mirovên derewker, nefsmezin, durû û yên ko xirabiyê bi xar û lez dikin û qenciyê bi şûn da dihêlin û paşgotiniya xelkê dikin dikevin ber xezeba Xwedê.

412 — Bi mezina re rabin rûnin, ji mirovên zana bipirsin û li eqildaran bigerin; têkilî wan bibin.

413 — Malê hindik û zaroyên pir belayeke mezin e, arikariya wan bıkin.

414 — Yên ko zad û xwarin û hûr mûrên ko xelk hewcedarê wan in tînin û ji xelkê re difiroşin mîna mirov in ko di riya Xwedê da cihadê dikin, lê yên ko ew biha difiroşin mîna mirov in ko kitêba Xwedê inkar dikin.

415 — Jin bi du giyana dibin, şîr didin zaroyên xwe, bi dilekî rehm li zaroyê xwe digerin, heke ew qedrê mêrê xwe ji digirin û nimêja xwe ji dikin bêşik dikevin bihuştê.

416 — Gava mirov ji tişteki zehf hez dike her û hor dibe.

417 — Ez ji dinya we ji jina û ji bihnên spehî hez dikim û çavê min ji nimêjê ronî dibe.

418 — Şîretan li xelkê bikin ta ko xelk ji Xwedê hez bike û ko xelk ji Xudayê xwe hez kirin Xwedê ji hejî we dike.

---

Lê gava Talût û eskerên di wî gihaştin lêva avê, piraniya eskerên wî ji ava çemî têr vexwarin, bes hindikê wan dest jê kişandin.

Gava Talût û bawermendên ko ji ava çemî venexwarin û pê bindestiya xwe şanî Talût dan derbasî avê bûn wan ji hev û du re digotin : Îro em bê taqet in, em nikarin bi Calût û eskerên di wî dest bi şer û kuştinê bikin, jû pê ve ew pir in, em hindik in.

Lê yên ko ji kerema Xwedê baweriya xwe ji dil anî bûn û yeqîn dikirin ko ew rastî Xwedê bên digotin : Bi destûra Xwedê çend car hate dîtin ko hindikahî zora piraniyê biriye....

Heçî xudansebr in digehin nisret û kerema Xwedê.

---

Ji bona Tefsîra Quranê K.K. û li hejmaêrn 27, 28, 29, 30, 31, 32, 33, 34, 35, û 36an fedkirin.

NIŞANK — Di hejmara 36an de ayeta 2?4 bi awayê jêrîn destpê dike: Ji bo ne,êkanîna ,enciyeke...

# DÎWANA MELÊ

## —8—

Serê zilfa te bi kulabi dia
Hate destê me bi celabi dia
Sofiyê xelwinişîn bête sicûd
Her du birhên te ne mihrabi dia
Erzekê dibikim sûreti hal
Ko tu yî qibleyi erbabi dia
Ji diayê qedehek ser destê te?
Her seher sinet e mey nabi dia
Guli îqbal ji gulzara qebûl
Me çini bû di şekerxabi dia
Her du birhên te, ne ixlas û yeqîn
Ko di wî secdeye erbabi dia[1]
Ji dilek safî bibîn me di mihrabê
Secdeyek lazim e erbabi dia[2]
Me bi dil irweyê-wisqa ye di dest [3]
Ji senaya te ser elqabi dia
Ji ezel yek cihetî daye Melê
Her me ixlas e ji esbabi dia

## —9—

Destê qudret ko hilavêt ji bejna te niqab
Bi cemala ceberûtî, me ne ma perde hicab
Li gulên te yê nazik ko seher girte xunav
Di ebarîqê reqîban [1] ji hesed sote gulab
Eyni kafûre bi meşreb, me ji hisna te ê saf
Lew di eşqa te di dil da l'me vebû ilmi ibab
Me ji ser çeşmeyi heywan, qedehek saf vexwar
Nagihê lezetê zewqa me, bi sed cildi kitab
Lew di çengê me dixwînin [2] ko di eşqa te bi saz
Me bi bejna te dixwînin[3] ney û qanûn û ribab
Qehweya telx di gel zehra hilahil biderî
Me ji destê te mibarek şekeramîze gulab
Ger ji destê te mibarek jehri qatil vexwim ez
Vê li min şehd û esel bit şekeramiz û xweşab
Qelzemi eşq, ji bayê xwe mixalif demekê
Ne dema hate icacê me li ser destê xirab
Seherê Xidrê inayet ko birin çeşmeyi dil
Bi cihanê me nezer da ko cihan eyni serab
Bi hibabê mebe mexrûr webe [4] serkeşte Mela
Ba ye ber keftiye wî beyhûde sergeşte hibab
We ye hudhnd ji Seba bêt me nizanî çi ye hal
Ko li halê me xerîban ne sial û ne cewab
Her du birhên te ne mihrab çi îman û çi kufir
Bûd û nabûd ko yek in ew çi sewab û çi iqab
Were Nîşan! bide nîşani xwe bê perde seher
Lê ji xwînê bike perhîz ko şehîdan çi hisab.

## —10—

Lilehil hemd ji yarê me di dest cam e lebaleb
Ji lebê noşî peyapey di dil ilhami lebaleb
Tureya wan xet û xalan, ko ne herfên qelemê ne
Me ji feyza te ye mestane rewan [1] cam e lebaleb
Mesti şehkasi meya cazibeyên rûh we dîn
Rûh dizanit ko ji ber lezetê eşq mame lebaleb
Nêrgiza mest ji bala çimenan simbil û gul tê
Qedehi taze bi destê xwe meşî, da me lebaleb
Wahidek sirf e me meşreb te çi îksîri wicûd
Em lebaleb, çi lebaleb, bi xwe hem came lebaleb
Şemh û perwane bi zatê xwe ji halê me di dûr in
Ateşek sirf e ji eşqa te vewesta me lebaleb
Qedebek taze ji eşqê, di ezel da me hekîmî
Yê dinoşin hey û heyhey bi xwe cama me lebaleb
Carekê gote Nîşanî; ne Mela; min were bavê
We jî xwest min dil û can û dihen kami lebaleb
Te dizanim, te dibînim, ko tu yî nûrî [2] wicûd
Elah elah, ji çi nûra te serapa me lebaleb [3]
Ji inayet nezerî xase ko her misreh û baytek
Qedehên abi heyatî ne di şihra me lebaleb.

## —11—

Şeh bi qesda kuştina min rim hejand mirr go sebeb
Da me çeşmê qehr û xeşmê, rim di dil da go edeb
Kuştiyên dîdar û dînê bê xeta her deh sed in
Her seher dîsa ji nû va têne kêrê sed celeb
Dê ji çerxi pencemîn bêtin tenezil ket merîx[1]
Mislî şemsê gergeşîn awan dê bêtin xezeb
Her mecalê ew di çengê bêt û wert her carekê
Rast û çep dê bêxitin sed, sed bi mizraq û qeseb
Ristem û Cemşîd û Xalid Hemzeyê şêrê Elî
Aferîn ey şeh siwarê kurd û rimbazê ereb
Lê li tûlê asîtanê çix bi wan le'lan kirin
Dergehên fethê vebûn îro limehcûran eceb
Bendey ê sadiq seher armanci reştûzên xwe kir
Min bi qewlê dijniman, det ber xadengan bê sebeb
Leşkerê qehr û xeman ve çûn hesara dil bikin
Ke'be û beytil herame lê ne borîtin receb
Siftine pir le'l û mercan bi mijganan heta
Dîdê rewşen bin bi dîna dêmdurê sîmîn xabeb
Yêko Xidrî ra divêt ava heyatê bit nesîb
Dê di se'y û cebdê yeksan bin li bal wî rûz û şeb
Xizmeta pîrê mixan dê kit kesê meqsûde mey
Şîşe û cama zicacê yê divêt dê rit Heleb
Cewri Hindê dê kişînit her kesî tawûs divêt
Gewher û dura yetîm bê terkî ser nînin teleb
Xefletê ew keşfê şîr dest bi dest hatin ceger
Go xenîmet ya Melê, miskîn Mela ker kir kezeb.

* * *

Di hin qesîdeyên ko di hejmarên 35 û 36an de belav bûne hin xeletên çapê hatine dîtin. Em wan xeletan li jêr rast dikin.

Hejmar: 35. Qesîde: 2. Rêz: 11.
Erwahi miqedes şeva qedrê, te dixwazin.
Qesîde: 3. Rêz: 2.
Da eşq hil bit pêl bi pêl
Qesîde: 4. Rêz: 12.
Em bi semayê birin reqs û sema ji wê ma
Hejmar: 36. Qesîde: 5. Rêz: 3.
Min dî seba bayê seher madara bedrê kir du ker
Qesîde: 5. Rêz: 9, 10.
Me divê ko dîsa dilberê, hey hey li islûba berê
Kifş bî ji taqa pencerê bê û biçî teşbîhi ba
Qesîde: 5. Rêz: 12.
Vê nameyê xef de bi dest fi teyiha neşrun neba
Qesîde: 5. Rêz: 12.
Ew lamia danî ji text ma kane berqen xeleba

Q. C. P.

Ferqên nivîştan:

8

[1] Me di wê secde ye adab û dia. [2] Sec-

# HEVÎNA PERÎXANÊ

Rojeke pehîza 1907an bû. Perîxan û Eyşe di bexçê de dileyistin. Perîxan donzde û Eyşe jî sêzde salî bû.

Wek hergav, lêstika wan dîsa şer bû: Perîxan bû bû eskerê kurd û Eyşe jî eskerekî romî. Berê, ji dûr ve bi keviran dan hev; piştre nêzîk bûn û bi daran, bi sîlan û bi kulmikan ketin hev.

Perîxanê di van tiştan da xwe zû ji bîr dikir, bi rastî şer dikir, wek pilingeke birîndar xwe tavêt ser dijminê xwe û pir dom ne dikir ew dida ber xwe.

Eyşê jî xwe li ber Perîxanê pir ranegirt; xwe sipart wê û bext jê xwest. Lê Parîxanê dilê xwe zû bi zû hênik ne dikir: di wê de ji navê «romî» û ji romiyan re kîneke venekuştî, kûr û bê payan hebû. Bi darê xwe li kumê Eyşê ê hesin dixist û digot ê: «romiyên genî! hon bi bêbextî me dîkujin! heqê me distînin! lê di şerî de dawiya we bi kurdan re ev e! her bijî kurd! her bijî Kûrdistan!» Qirîn, zarîn û hêviyên Eyşê Perîxan sist ne dikir.

Di vê gavê de, ji aliyê malê merivekî xuya kir. Nêzîk bû; ew apê Perîxanê bû. Bêhal dimeşiya; di çavên wî ên sor de şopên hêstirên ziwa xuya dikirin. Hat, destê Perîxanê girt û bi dengeki têrêş got ê: «Bes e Perîxan! Bes e! te hevala xwe kuşt!» Perîxanê bi erin û xeyd li Eyşê nêrî û lê vegerand: «Heqê romiyan û yê dostên wan ev e! bila Eyşe romî nebe! Nizanim emê rojekê tola xwe vekin!... Emê wan ji erdê xwe derêxin!... derêxin!...»

Piştre destê xwe da apê xwe û meşiyan. Piştî demekê, Perîxan hat ser hişê xwe; serê xwe rakir û li apê xwe nêrî: halê wî ê pêrişan endişeyeke mezin xist dilê wê. Çima apê wê bêhal bû?... çima wek hergav ne dikenî û ne dipeyivî?... Bavê wê ê biha li ber dilê wê hate bîra wê... Perîxanê baş dizanî jîna bavê wê her gav di xeterê de bû. Hezar tişt hatin bîra Perîxanê û telaşeke mezin dan ê. Dilê wê ê piçûk pir hildavêt û laşê wê ê zirav û narîn dilerizî.... Dixwest zû bigehe mal... zû...

Ezman reş bû. Bayekî pehîzê î pîs pelên daran ên çilmisî û zer dibarandin ser serê Perîxanê û apê wê. Ev pel wek laşên miriyan diketin erdê û ew dinixumandin. Perîxanê bihintengî dikir... Mal jê re dûr... pir dûr xuya dikir; dimeşiyan,.. dimeşiyan lê ne digihan ê...

Dawiyê hatin. Ketin hundir; xelkê malê di lîwanê de bûn û digirîn. Perîxan di nîvê odê de ma û li dora xwe nêrî: ciyê bavê wê vala bû... Ruyê wê bû zer. Bîstekê xwe winda kir; lê zû xwe ragirt û çavên xwe vekirin: diya wê reşa xwe girêda bû; rûniştî, digirî; serê xwe rakir; keça xwe dît, milên xwe jê re vekirin: Perîxan weke çûkeki birindar kete himbêza diya xwe û bi girîn got ê: «Dayê! Dayê! Kanî bavo? ka bavê min ê delal? Kuştine! ne?...»

*
* *

Bavê Perîxanê, Mûsa begê kêsanî, merivekî gir, çeleng, dewlemend û miletperwerekî bêja bû. Wî ji piçûkayiyê da heji miletê xwe ê dîl, hergav bindest lê mêr û qehreman dikir û ji bo serbest û serbilind bûna wî dixebitî. Mûsa beg civateke veşartî digerand. Armanca wî ev bû: «yan serxwebûn yan mirin!» Tu kurên Mûsa begi nîn bûn. Bi tenê Perîxana wî hebû. Ji lewre hêviya xwe bi wê girêda bû. Mûsa beg keça xwe wekî kurekî bi xwedî dikir û her tişt hînî wê dikirin.

Êvaran ew rûdinand ber xwe û bi saetan ve wek hevalekî pê re dipeyivî. Carina ew dikir himbêza xwe, destê xwe di ser pora wê a reş re digerand û li çavên wê ên kesk û bijangreş dinêrî û digot ê: «Perîxan! ev çi çav in, Perîxan? Ev ne wek çavên xelkê ne! Çavên te pir kûr, dûr û tûj dinêrin! Ev ji min re pir tiştan dibêjin. Ez di van de qedera Kurdestanê, cihanîna

---

deyek lazim e der babi dia. [3] Me bi dil irwet û siqa te di dest.

9

[1] qenînan. [2] dixewnin; yanî xuya dikin. [3] dixewnin. [4] were.

10

[1] rewan. [2] nûrî. [3] Elah elah ji çi nûr e te serapa me lebaleb.

11

[1] Dê ji çerxi bê xemîn bêtin tenezil ket merîx. C. A. B.

hêvıyên xwe dibinim, min bê guman neki, Perixan ! » Perixanê milên xwe ên zirav li stoyê bavê xwe digerand, ew maç dikir û çavên wê hêstir dikirin.

Perixanê ji niho de bavê xwe hêvîdar dikir : Memozîna Ehmedê Xanî ji ber kiri bû. Xerîta Kurdistana mezin, tevi bajêr û gundên wê wek resamekî ji ber çêdikir û dîwarên odeyên malê bi wan dixemilandin, ji dîroka kurdan pir tişt dizanîn û dilgirtiya mêraniya wan dibû.

Mûsa beg ji keça xwe razî bû. Perîxan rojekê bi kêrî milet bihata . . .

* * *

Wê rojê, gava, Perîxan di bexçê de dileyist, bavê wê bi hevalên xwe ve civînek dani bû. Bi bêbextiya yeki eskerên romi dora çiyê girti bûn û keti bûn bundir. Ew yek bi yek derêxistin, birin qişlê û ew dan ber tifingan.

Gotinên Mûsa beg ên dawîn ew bû bûn. « Her biji serhestî ! her biji kurd ! her biji Kurdistan ! ». Mûsa beg piştî ko ev gotin keti bû erdê û di xwina xwe de vegevizî bû . . .

* * *

Diya Perîxanê mesele giş got ê. Perîxan dilgirtiya bavê xwe bû; hineki girî. Lê gotinên bavê wê hatin bîra wê : « yan serxwebûn ! yan mirin ! Perîxan ! min bê guman neki ! » Belê! Bavê wê di riyeke miqedes de hati bû kuştin; qurbana armanca xwe bû bû. Rabû, çavên xwe ziwa kirin û ji diya xwe re got : « Dayê ! bavê min dijwarbûna riya xwe dizanî; wi ev tişt giş da bûn ber çavê xwe. Lê wisa diviya bû. Ez riya wi digirim. Divêt ez tola wi û tola welêt rakim ! . . . rakim ! . . . Ev jî ne bi girî, lê bi xebatê dibe . . . »

Perîxan ji liwanê derket û ket kitêbxana bavê xwe.

* * *

Şeş sal borîn. Perîxanê dibistana xwe xelas kiri bû û bû bû dilbereke bejinzirav, hinariksor, narîn û awirpiling. Weke hemi keçên nifşê xwe, Perîxan ji dilketi bû.

Lê hevîna Perîxanê ne weke hevîna herkesî hevîneke adî bû. Perixan dilketiya armanca bavê xwe, dilketiya serbestiya miletê xwe, dilketiya serxwebûna welatê xwe bû.

Perîxan, niho, ji heyeta civata bavê xwe a kevin bû. Bi jirî, xebat, ixlas û agirê wê, civat li her derên Kurdistanê ji xwe re lebatên hêja peyda kiri bûn. Perîxan bê etlahî dixebiti û xwe ji bo rojeke minasib hazir dikir. Ew roj hat.

* * *

Rojeke cejna romiyan bû. Esker li meydaneke mezin hati bûn rêz kirin. Serdarê esker û hakimê Kurdistanê bi zabitên xwe li ciyeki bilind, di bin çadirekî de rûnişti bûn û temaşa esker û xelkê dikirin.

Kurd berê vî bi rojekê xwe li her derê Kurdistanê pêk ani hûn : Bi tenê ji wan re canbêzarek diviya bû. Ji bo wî ji Perîxanê xwe pêşkêş kiri bû.

Dinê bihar bû. Her der bi heşînayî û bi kulîlkên rengareng xemilandî bû. Perîxan, bi cilên hevrîşim spî, bi bejna xwe a zirav, bi porên xwe ên reş û çavên xwe ên dilbirin spehitiya kulîlkên biharê bû.

Perîxanê bi navê bajêr ji hakim re kulîlk pêşkêş bikirana.

Perîxanê kulîlkên xwe dani bûn di nav sepeteke piçûk û xemilandî. Li bin kulîlkan bimbêk hati bû veşartin.

Niho Perîxanê sepet di destên xwe de girti bû û weke periyekê di nav esker re dimeşiya. Çavên xelkê lê bûn û heyran û mest lê dinihêrtin.

Hevalên Perîxanê, sesderb û bimbe bi dest ve, hêdi . . . hêdî . . . xwe dixistin paşiya esker. Hinekan ji dora qişlê digirtin.

Perîxan giha çadirê hakim. Hakim rabû, çû pêşiya Perixanê û destê xwe dirêjî selikê kir. Di wê gavê de, Perîxanê selik rakir û çiqas jê dihat hewqas bi xurti ew xiste erdê. Di nav toz û dûmanê da her tişt winda bûn . . .

Ji aliyên din, dengê tifing û bimban dihatin. Lê pir dom ne kir.

Romi bê serek ne dikarin xwe li ber agirê hevalên Perixanê bigirin. Kurd ketin qişlê û ala xwe çikandîn ê.

Piştî çend saetan, hevalên Perixanê ên serdest hatin ciyê bimbê. Ji ax û kuç pê ve tu tişt xuya ne dibû. Hineki kolan : laşê Perixanê di ser yê hêkim re ditin. Pencên wê li stoyê wi kilit bû bûn. Hevalên wê bihin ji ber xwe çikandin û sekinîn. Paşê bi hirmet

## KURDISTANA BAKUR

Çi wexteke xweş bû. Min dibistanek bi donzde şagirtan hebû. Belê di sala 1938an de di Senceqê de min dibistaneke kurdî danî bû û min tê de dersa şagirtên xwe bi kurdî digotin. Lê wek her tiştê rind û baş ev jî pir dom ne kir. Dibistana min hate girtin, şagirtên min belav bûn. Rojekê min ji şagirtên xwe re derseke cexgrafyayê jî da; cexrafya kurdistana bakur. Min dil kir vê dersê ez di Hawarê de belav hikim. Heye ko bi kêrî hinên din jî hê.

Di vê dersê de min navên wilayet û qezan, nifûs û mesahe jî gotî bû.

AGIRÎ — 4 qezayên wê hene: Diyadîn, Doxê, Beyazid, Elaşgird. Rûyê erdê wê 12600 kîlomêtir çarçik. Nifûs. 299619.

HEZAROM — 7 Qezayên wê hene: Xinis, Spîr, Qereyazi, Oltî, Parsin, Tercan, Tortom. Mesahe: 28970 K. Ç. Nifûs: 384477.

HEKARÎ — 3 qezayên wê hene: Zap. Kevar, Şemzdînan. Mesahe 15505. Nifûs: 25016,

BÎNGOL — 4 qezayên wê hene: Cebeqçûr, Gênc, Kêxî, Şilxan. Mesahe: 9157. Nifûs, 60000.

WAN — 8 qezayên wê hene: Başqele, Gewêş, Erdiş, Gurpinar, Hewasar, Miradi, Ûzalip, Şitaq. Mesahe : 30635 Nifûs: 142661

MÛŞ — 3 qezayên wê hene: Belanix: Qulp, Varto. Mesahe: 28897, Nifûs: 157503

BEDLÎS — 4 qezayên wê hene. Exlat, Hizan, Qotor, Motkan. Mesahe. 7072. Nifûs. 50000.

DIYARBEKIR — 8 qezayên wê hene. Bismil, Çêrmûk, Çinar, Egil, Erxenî, Qulp, Lice, Silîvan. Mesahe. 11875. Nifûs 214875

XARPÊT — 6 qezayên wê hene. Bêzgi, Zalheyder. Kevanmaden, Paxirmaden, Palo, Sêvrêj. Mesahe. 1?036 Nifûs. 235141.

SÊRT — 7 qezayên wê hene. Bişêrî, Erih, Xerzan, Berwarî, Şêrwan, Şernex. Sason. Mesahe. 14305. Nifûs. 127870.

MÊRDÎN — 9 qezayên wê hene. Cizîr, Dêrik, Kercos, Bêdilê, Şemreq, Midyat, Nisêbîn, Serêkanî. Sorikan, Mesahe. 13045 Nifûs. 235020.

ROHA — 6 qezayên wê hene. Heran, Helwan, Sirûc, Sîwerek. Wêranşehr, Yayleq. Mesahe. 15880. Nifûs 299194.

DÊLECÛG — 4 qezayên wê hene. Bozanbeg, Gulbazar, Lêvkend, Sêgot. Mesahe. 4731. Nifûs. 125417.

MELETYE — 9 qezayên wê hene. Edyeman, Eqçedax, Erebgîr, Bêsnî, Hekîmxan, Darend, Kexte, Egin, Petirke ( Şiro ). Mesahe 21265 Nifûs 412025

Di her du wilayetên Qers û Sîwasê de yên ko bi Kurdistana bakur ve ne qederê ( 400000 ) kurd hene. Nifûsa Kurdistana bakur bi vî awayî digehe ( 3168818 ) ji kurdên Xeymenê pê ve. Min ev hejmar ji statîstîka sala 1937an girtine

HIŞYAR

# BINGEHÊN

## GRAMÊRA KURDMANCÎ

BI NAVÊ YEZDANÊ PAK Ê DILOVAN Û MIHIRVAN

### — 10 —

77 — Pronavên kesîn du tofên biserxwe ditînin pê: pronavên kirar, pronavên bireser.

Pronavên kirar bi gelemperî dikevin şûna wan navdêrên ko di qisetê de kirar in. Herçî bireser dikevin şûna navdêrên ko di qisetê de bireser in.

Ji lewre ev pronavên ha nayine tewandin. Ji ber ko şiklên wan ên bireser şiklên wan ên tewandî ne. Lê herçî pronavên ko şiklên wan ên tewandî nînin, gava ew, di qisetê de dibin bireser, wek navdêrên ko dinimînin têne tewandin.

| Pronavên kirar | Pronavên bireser |
|---|---|
| ez | min |
| tu | te |
| ew | wî, wê |
| em | me |
| hon | we |
| ew | wan |

78 — Awarte: Herwekî di mada ( 56 ) de hate gotin, navdêr gava kirarê lêkereke gerguhêz in, di zemanên xwe ên borî de weke bireseran têne tewandin û ji bervajî ve bire-

laşê wê derêxistin û ew li ser destên xwe di nav bajêr de gerandin.

Ji aliyên din nûçeyên serdestiya kurdan dihatin. Xelkê hêstirên şîn û şahiyê dirijandin û giyanê Perixanê di tava ala rengîn ne diçirisî û ji giyanê bavê xwe re dikenî.

NÛREDÎN ÛSIF

serê wan ên sererast weke xwe diminin. Ji ber vê yekê di van lêkeran de pronavên kirar bi ên bireser diguhêrin û her yeke wan dikeve şûna a din; yanî pronavên kirar dibin bireser û ên bireser dibin kirar.

Ji lewre lêkerên wek « gotin, xwarin, xistin » di zemanên xwe ên borî de bi pronavine bireser têne çevandin û bireserên wan ên sererast bi pronavine kirar têne nimandin. Herwekî: min got, te xwar, wî xist, we got, wê xwar, wan xist, me xwar. Çend misal :

| | |
|---|---|
| Zînê Sisin dit. | Wê ew dit. |
| Hespan ceh xwar. | Wan ew xwar. |
| Min qelem ji destê xwe xist. | Min ew ji destê xwe xist |
| Ciranan em ditin. | Wan em ditin. |
| Soro ez xapandim. | Wî ez xapandim. |

## PRONAVÊN KIRAR

79 — Pronavên kirar dikevin pêşiya lêkeran û lêker rast bi rast didin pey wan: ez hatim, ew çû, min dixwar, wan goti bû, ezê herim, min dê bigota.

80—Carina û gava di komekê de bireserin hene, hinekên wan dikevin navbera pronav û lêkerê: Îro, ez ji Farqînê hatim. Ew dibî berî nîvro çû Diyarbekrê. Min nan xwar. Ez diçim nêçîrê. Wan ev tişt ji min re di koçka we de goti bû. Ezê sîbê bi birayê xwe re herim dibistanê.

81—Heke lêkerê du kirarên têvel hene pronavên ko wan dinimînin, li gora rêza kesên xwe didin pey hev, yanî kesê diwim dide pey kesê pêşîn û kesê seyim dide pey kesê diwim. Ji bo xurt kirina gotinê piştî pronava didowan pronaveke gelejmar û ji kesê pronava pêşin tête hildan. Ji lewre nabe ko mirov bibêje: « ew û ez em hatin » lê divêt bibêje « ez û ew em hatin » an « ez û ew hatin ». Ji ber ko « ew » ji kesê seyim û « ez » ji kesê pêşin e. Çend misalên din: Tu û ew hon çûn. Ez û tu emê herin. Te û wî we bigota. Min û te me ne xwar. Ez û ew em rabûn.

82 — Heke di komekê de çend lêker, lê kirarekî bi tenê heye hingê ne gerek e ko di pêşiya her lêkerê de pronav bête tekrar kirin. Ji lewre, li şûna ko mirov bibêje: « ew çû, ew lê fedkirî û ew vegeriya » dikare bibêje û spehitir e ko bêje: « ew çû, lê fedkirî û vegeriya ». Disan li şûna « Min kirî, min fîfrot û min pê kar kir » mirov dikare bibêje: « min kirî, fîrot û pê kar kir ».

83 — Lê heke lêker tev de ne ji yek cisnî ne, yanî hin gerguhêz û hin jî negerguhêz in; hingê li gora pêkhatina komekê lêker bi pronavekê an bi didowan têne çevandin.

84—Pronava lêkera negerguhêz di pêşiyê de:

Vêca her lêker li gora cisnê xwe û bi pronavine cihê têne çevandin. Yanî lêkerên negerguhêz bi pronavên xwe û ên gerguhêz, bi yên xwe. Û herweki ji mîsalên jêrin dixuye hevokên ko lêkeran ew anîne pê dikarin bi hevgihanga « û » yê bi hev re bêne girêdan:

Ez çûm, [illegible] ji xwe re hespek kirî.
Ez çûm û min [illegible] xwe re hespek kirî.

Tu çûyî, te ji xwe re hespek kirî.
Tu çûyî û te ji xwe re hespek kirî.

Ew çû, wî ji xwe re hespek kirî.
Ew çû û wî ji xwe re hespek kirî.

Em çûn, me ji xwe re hespek kirî.
Em çûn û me ji xwe re hespek kirî.

Hon çûn, we ji xwe re hespek kirî.
Hon çûn û we ji xwe re hespek kirî.

Ew çûn, wan ji xwe re hespek kirî.
Ew çûn û wan ji xwe re hespek kirî.

Şanek — Di kesên seyim de şikilên « ew çû û wî kirî » û « ew çûn û wan kirî » îro hesêb nayine gotin yanî ev şikil ji kar haline êxistin. Di kesên seyim de pronavên didowan yanî « wî » û « wan » têne xistin û komek dikevin şiklên jêrîn :
Ew çû, ji xwe re hespek kirî.
Ew çûn, ji xwe re hespek kirin.
Di vî şikilî de her du pronavên « ew » çi yekejmar çi gelejmar êdî ne pronavine kesîn lê pronavine işarkî ne.

85 -- Pronava lêkera gerguhêz di pêşiyê de :

Hingê her du lêker bi yek pronavê têne çevandin, bi pronava lêkera gerhugêz.

Min çû ji xwe re hespek kirî.
Te çû ji xwe re hespek kirî.
Wî ( wê ) çû ji xwe re hespek kirî.
Me çû ji xwe re hespek kirî.
We çû ji xwe re hespek kirî.
Wan çû ji xwe re hespek kirî.

Herweki di misalên jorîn de tête ditin, di vî şikilî de lêkera negerguhêz jî - wek lêkereke gerguhêz - bê dûpaş tête çevandin. Yanî « çûm, çûyî, çû, çûn, çûn, çûn » tev de

dibin « çû ». Mirov dikare bibêje qey lêkerên « çûn » û « kirin » gihane hev û lêkereke hevedidanî wek « çûnkirin » anîne pê. Û ji ber ko di lêkerên hevedidanî de hikim û îtibar li lêkera paşin e, û di karê me de lêkera paşin « kirin » lêkereke gerguhêz e, lêkera hevedidanî « çûnkirin » lêkereke gerguhêz hatiye hesêb û welê hatiye çevandin.

## PRONAVÊN BIRESER

86 — min, te, wî, wê, me, we, wan

Herwekî di mada ( 77 ) an de hate gotin ev pronavên ha di eslên xwe de pronavine bireser in : ez te dibînim, tu min dibînî, em wan dibînin, tu wê dibînî, em we dibînin, hon wî dibînin, ew me dibînin.

Lê di lêkerên gerguhêz û di zemanên wan ên horî de ev pronav dibin kirar û heke lêkerê bireserekî sererast heye ew bireser bi pronaveke kirar tête guhartin : min tu dîtî, te ez dîtim, wî em dîtin, wê hon dîtin, me tu dîtî, we ez dîtim, wan em dîtin.

Lêbelê heke bireserê lêkerê ne sererast, lê nerêrast e; hingê û li gora qeyda bingehîn pronav weke xwe dimînin ; min ji wan re got, te ji min stand, wî ji wan girt, wê li me da, me bi wan nikarî bû.

87 — Xwe.

Ev pronava nêtar her du mêjer û zayendan jî dinimîne; yanî dikeve şûna mê û nêr, yekejmar û gelejmar : wî xwe kuşt, wê xwe kuşt, wan xwe kuşt.

Gava di komekê de kirar û bireser ji yek kesî û ji yek mêjerî ne û tevgera kirêrast bi rast li ser wî bi xwe ye, hingê pronava bireser bi pronava « xwe » tête nimandin. Bi gotinên din pronavên ji yek kes û mêjerî û yeke wan kirar û a din bireser di komekê de nagehin hev. Ji lewre mirov nikare bibêje « ez min di neynikê de dibînim » ji ber ko « ez » û « min » her du jî ji yek kesî û ji yek mêjerî ne; û yeke wan kirar û a din bireser e. Ji ber vê hindê divêt bête gotin : « ez xwe di neynikê de dibînim ».

Lê di komeka : « ez pezê me diçêrînim » de du pronav ji yek kesî û yeke wan kirar û a din bireser gihane hev. Ji ber ko ew herçend ji yek kesî bin jî ne ji yek mêjerî ne; «min» yekejmar û herçî « me » gelejmar e.

Lê ji milê din em dibînin ko di komeka « ez te û birayê te dibînim » de du pronav ji yek kes û mêjerî gihane hev. Ji ber ko her du jî bireser in û di wan de tu kirar nîne.

88 — Awarte. Pronava « xwe » ya ko di eslê xwe de pronaveke bireser e carina û bi kirarekî di ve di cihê kirar de têtê dîtin. Herwekî : « Ez û birayê xwe em hatin. Min û birayê xwe me got. Tu û birayên xwe hon ji min re sax bin ».

Di vî halî ji de mîna ko di mîsalên jorîn de têtê dîtin pronavên ji yek kes û ji yek mêjerî nagehin hev. Lê heke mêjer guhêrî hingê ew digehin hev : Ez û xulamên me em hatin. Min û birayên me xwar.

89 — Ê.

Ev pronava nêtar bi tenê yekejmarê dinimîne û dikeve şûna pronavên « vî, vê, wî, wê » yên ko di komekê de piştî lêkerê hatine hildan, herwekî di mîsalên jêrîn de :

| | |
|---|---|
| Min da vî, vê | Min da ê |
| Min da wî, wê | Min da ê |
| Ezê bidim vî, vê | Ezê bidim ê |
| Ezê bidim, wî, wê | Ezê bidim ê |

Lê li şûna « min da wan » « min da ê » naye gotin; ji ber ko pronava « ê » nikare mêjerê gelejmar binimîne.

✶ ✶ ✶

NÎŞANK — Şaneka jêrin li dawiya mada (12) wê bête zêde kirin. ( Hawar : 28. rûpel : 10 )

S — Di hin cihên Kurdistanê de gava ev dengdar « s » dide pey dengdêrekê wê hinek tîj weke « z » kê dixwînin. Ev awayê bilêvkirinê nakeve nivîsandinê û « s » hergav weke xwe yanî « s » têtê nivîsandin û bi « z » yê nayete guhartin.

| Awayê Nivîsandinê | Awayê Bilêvkirinê |
|---|---|
| Biguhêsîne | Biguhêzîne |
| Selete | Zelete |
| Ez çûm Parîsê. | Ez çûm Parîzê. |
| Ez derbas bûm. | Ez derbaz bûm. |
| Ji pesnan diştexile. | Ji peznan diştexile. |

C. A. BEDIR-XAN

# ZÊRÊ EWROPAYÊ

Îro di dinyayê de hesêb tu pereyê madenî ne maye; ji hin polikên sifir û nikel pê ve. Zêr û ziv di sto û zendên jinan an di devên mirovên kêmdran de têne dîtin. Di destê xelkê de li şûna polikan kaxez heye. Lê miqabilê wan kaxezan zêr di banqeyên her dewletê de veşartî ye.

Di vî şer. de zêrê Ewropayê bi piranî cihê xwe guhastiye û çûye Emêrikayê. Ji ber ko ev zêr malê dewletê ye û gava dijmin dikeve welateki dikare vî zêrî zemt bike. Ji ber vê yekê zêrê Ewropayê ji ber elemanan revî û qesta sirdabên Emêrîkê kir.

Dewleta pêşin ya ko zêrê xwe revand Polonya ye. Tucaran ne dihate bîra Polonyayê ko elman di çardeh rojan de wê bigehin deriyên payîtextê wê. Ji lewre hikûmeta Polonyayê heta roja ko topên elmanî li istihkamên Verşovayê dan tu tevdir ji bo revandina zêrê xwe ne dîtî bû.

Di bin guleyên dijminan de revandina zêran işeki zehmet bû. Zêrên Polonyanê 21 milyon bûn.

Fermandariyê kemyonên Verşovayê lev de misadere kiri bûn. Ji lewre kemyon bi dest ne diketin. Dawiyê pênc kemyonên kevin peyda kirine û mixdarê zêrê ko di wan kemyonan diçû li wan bar kirine û deh peyayên fedayî ew ji Verşovayê derêxisline. Di nav wan deh peyan de wezîrê maliyê ê berê Mazoskî jî hebû.

Ji ber bimbardimanan rê xerab bû bûn. Digel vê hindê wan deh peyan ew pênc kemyon bi sehrazahî û bi lez ajotin û berê xwe dan welatê ûris. Kemyon bi şev bi rê ve diçûn û bi roj xwe di bin daran de vedişartin. Roja din radyowa Verşovayê ji wan re dida zanîn ko elman bi wan hesiyane û dane ser şopa wan. Li ser vê xeberê Mazoski vegeriya Verşovayê. Hikûmetê zêrê mayîn jî li deh kemyonên din bar kirin û sparte wî. Mazoskî wê riya xwe biguharta û berê xwe bidaya nivro, ber bi behra reş.

Mazoskî bi deh kemyonên nû ve xwe gihande pênc kemyonên din û zêrê welatê xwe anî Romanyayê, bendera Kostencê. Li bendera Kostencê veporeke emêrikanî hebû. Ew vapor wê biçiwa Rûsyayê. Keptan û Mazoskî li hev hatin û zêr lê bar kirin û bi rê ketin. Vapor gihaştî bû nîvê rê, radyowên dinyayê elam didan ko ûrisan jî direjî Polonyayê kiriye. Mazoskî disa qesta keptên kir û jê xwest ko berê vaporê ji Rûsyayê biguherînê û bide Stenbolê. Keptên ji ya wî kir û zêrê Polonyayê anî Stenbolê.

Vêca Mazoskî miracahetî tirkan kir. Tirkiye miraceheta Mazoskî qebûl kir û jê re ji bo guhastina zêran ji Stenbolê li Helebê trêneke bi çek û mihafiz pêk anî. Lê hikûmeta Tirkiyê ji bo kirê trênê 1000 zêrên zer dixwestin. Ev pere bi Mazoski re nin bû. Şirketeke emêrikanî ev pere bi kerê xwe da Mazoski û wî jî zêrê xwe anî Helebê. Zêr ji Helebê hatin Bêrûtê. Li bendera Bêrûtê du krewzorên frensizî li benda wî bûn. Zêr li wan bar kirin û rêkirin Emêrîkayê.

Dewletên din, ji halê Polonyayê ibret girtî bûn. Holandê beriya ko eleman bikeve welatê wê, bi du mehan, zêrê xwe rêkir Emêrikê. Zêrê Holandê 160 milyon bû.

Denimerkê ji 21 milyon zêrê xwe şande Emêrikayê.

Herçî Norvêç, beriya ko 37 milyon zêrê xwe birevine elman ketî bû welatê wê. Digel vê hindê norvêçiyan zêrên xwe bi şev revandine û li vaporekê bi navê Yomê bar kirine û bi selamet gihandine Emêrikê.

Gava eleman ketine Norvêçê îsvêçiyan jî zêrê xwe revand.

Herçî Frense 130 milyon zerê xwe heta dawiyê di sirdabên benqa xwe de hişti bû. Lê gava elman ketin dora Porîsê hikûmeta frensiz ew zêr li krewzora Vensan bar kir û şande Emêrikayê. Krewzor ji xisti bûn bin bandêra emêrikanî.

Dibêjin ko Sviçre zêrê xwe di şikeftên çiyayê Elpê de veşartiye û bi tenê çend peya bi cihê wî dizanin.

Disan dibêjin ko yewnan û yûgsolavan jî di wextê de xwe zêrên xwe revandine.

Herçi Belçîke, xebero. bi tenê birekî zêrê xwe karî bû birevine.

CEMÎLÊ TACDO

## DI ETLANTÎKÊ DE

### BISERHATIYA VAPOREKE SVÊÇÎ

Xwendevanên Hawarê hero di rojnaman de dixwînin an ji radyowê dibihîsin ko filan vapor di behra Etlantikê de bin av bûye.

Vaporeke svêçî bi navê Garem li 10ê Îlona 1940î ji Emêrikê rabû û dihate Ingilterê. Barê vaporê çek û cebirxane bûn. Vaporê ew dianîn Ingilterê. Garem li 25ê Îlonê di nizingi Îslandeyê de hate bin av kirin. Naxuda yanî keptanê vaporê biserhatiya xwe bi awayê jêrîn qise dike:

— Ji xwe beriya vî şerî bi salekê me

dı Etlantikê de talûkeke mezin derbas kiri bû. Dinya Zivistan bû, behir gelek nexweş bû, pêlên behrê di ser vapora me re radibûn û dadihatin. Me birekî mezin ji barê xwe avête behrê û bi vî awayî em xelas bûn. Digel vê hindê di dema firtinê de çar kes ji deryavanên me keti bûn behrê û xeriqî bûn.

Di pêşiya sala 1940î de, di nîzingî peravên Emêrikayê de em rastî krewzora elmanî, Graf von Spê, hatin. Krewzorê işaret dâye me ko em bisekinin. Lê ji ber ko em di peravên Emêrikayê de bûn em ne sekinîn. Krewzorê guleyek avête me û hingafte serê vaporê. Sê deryavanên me hatine kuştin û em sekinîn. Elmanan vapor velo kir û gava dîtin ko vala ye dev jê berdan. Me xwe gihande bendereke emêrîkanî. Ji hingê ve em di navbera Emêrike û Ingilterê de diçûn û dihatin û me ji ingilîzan re çek û cebirxane tanîn.

Li 10ê Sibata 1941ê em bi qeflekê ve diçûn Ingilterê. Bi rê ve rastî noqar û balafirên elmanî hatin. Bimbeyên balafiran diketin dora vapora me û herçi torpil di ber û di tanişta me re wek marine teyar diborin. Herçi torpiyorên me ên mihafiz bera noqar û balafran didan. Me digot qey em ketine dojehê. Lê Xwedê welê bez kir û em ji wê cehenemê bi selameti xelas bûn.

Vê carê dilê me hebû em herin welatê xwe û zar û zêçên xwe bibînin û bihna xwe bidin. Destûra me dan. Bi hewake xweş em ji Nûyorkê rabûn. Bi rê ve em rastî cenkeştiyên emêrîkanî hatin. Wan qefleke emêrîkanî dihemandi.

Li 20ê Ilonê emiraliya emêrîkanî elam da me ko bertorpiyoreke elmanî di van cihan de digere û wê û du bertorpiyorên emêrîkanî herçend li hev da bin ji bertorpiyora elmanî ji destê wan xelas bûye. Emıraliyê digote me ko em berê xwe bidin Îslandayê. Ji dûr ve me bertorpiyora elmanî dît û berê xwe jê bada.

Li 24ê Îlonê me dengê balafirekê bihîst. Balafir bilind difirî. Me ne zanî çi balafir e. Lê gelek ne borî balafir daket û li vaporekê da, bi navê Brîzîs. Brîzîs di cih de xeriqî. Ev vapor bi 4000 tonî mezin bû. Ya me 8000 ton bû. Me digot dor gihaştiye me jî. Lê balafirê bi Brîzîsê bes kir û li me ne xist û bi riya xwe de çû. Me bi bêtêlê elam da stola emêrîkanî û me jê xwest ko bête hawara me.

Di Brîzîsê de 87 deryevan hebûn. Me 39 peya ji wan xelas kirin. Wext bû bû nîvê şevê, em bi cenkeştiyekê hesiyan. Me digot ko keştiyeke emêrîkanî ye, bêtêla me girtiye û hatiye hawara me.

Lê gelek ne borî, me zanî ko keştiya ko nîzingî li me dikir ew bertorpiyora elmanî bû ko em jê direvin. Keptanê bertorpiyorê emrî me kir û got: dev ji mixaberê berdin û di nav deh deqîqan de filûqeyên xwe daxin behrê. Me bi emrê wî kir û li filûqeyên xwe siwar bûn. Em hêj ji vapora xwe bi dûr ne keti bûn ko bertorpiyorê topên xwe li vapora me girêda û ew bin av kir.

Piştî çil deqîqan sê cenkeştiyên emêrîkanî gehiştine me û em birin Îslandeyê. Me ew berotrpiyora elemanî nema dît.

EVDIREHMANÊ ROJKÎ

# ŞER

## WÊ KENGÊ XELAS BIBE

Rojnameke misrî bûyera jêrîn dide zanîn: Di tremwayeke Cizê de çar peya hebûn. Her çar ji ji Cizê diçûn Qahirê. Xenimek, du zelam û zabitekî hindî. Zabit derêxist û ji bilêtçî re heqê du bilêtan da û got ê:

— Yek ji min re û yek ji bo xanimê.

Xanim enirî û bi xeyd gote zabit:

— Çire, ma tu min ji kû nas dikî ko heqê bilêta min didî

Zabit got: Ma çi xem e Xanim, ji kerema xwe vê bilêtê ji min qebûl bike.

Xanimê dîsan bi xeyd lê vegerand û got:

– Tu sebeb nîne ko ez bilêta te qebûl bikim, min pere heye

Zabitê hindî got: Xanim mexeyide, lê te pere nîne. Te pereyê xwe li mal ji bîr kiriye.

Xanimê çentê xwe vekir û dît ko bi rastî pereyê xwe li mal ji bîr kirî bû.

Rêwingî tev de li vî îşî ecêbmayî man û ji zabit pirsin ko çawan ev tişt zanî. Zabit ji rewigiyan re da zanîn ko bi xwe ji feqîrên Hindistanê ye û ji lewre bi van tiştan dizane. Hingê rêwingiyan jê xwest ko der heqê istiqbala wan hin tiştan ji wan re bibêje. Hindî ji ber ko zabit ko nikarî bû li fala wan binêre.

# REWŞA DINYAYÊ

REWŞA TIRKIYÊ — Heta niho kesî nezanî Tirkiye hi kê re ye. Bi her du aliyan dide distine û ji her du aliyan re xweş dike. Mina medhelokê gotiye bi gurî goşt dixwe û bi şivên şînê dikişîne.

Herwekî xendevanên me dizanin Emêrikê qanûneke deyn û kirêkirnê heye. Li gora vê qanûnê Emêrîke ji dewletên ko şerê elemanan dikin bi deyn çek û posatan dide an wan ji wan re kirê dike. Ji ber ko ev dewlet wan çek û posatan bi pereyê pêşin nikarin bikirin.

Li 4ê vê Kanûnê mister Rûzwelt reîscimhûrê Emêrîkayê emirnameyek imza kir û pê da zanîn: ji ber ko midafeha Tirkiyê ji bo selametiya Emerîkê gerek e Emêrîke ji Tirkiyê re jî li gora qanûna deyn û kirêkirinê çek û her texlît hesincawên cengê wê bişîne.

Ji milê dîn Emêrîkê da zanîn ko ji şeş mehan de ye Emêrîkê her tişt ji tirkan re dişand; lê li ser destên ingilîzan û ji bo her carê emirnameke Rûzwelt diviya bû. Ji niho û pê de ewê rast bi rast ji hikûmeta tirkan re bişînin. Di nav çekên ko ji tirkan re wê bêne şandin cilên eskerî jî hene.

Digel vê hindê Tirkiye di şerê Japon û Emêrîkê de ji bêteref e.

ŞERÊ LÎBYAYÊ — Ji 18ê Çiriya - paşin ve şerê Lîbyayê ji nû ve dest pê kiriye. Ingilîzan dirêjî talyan û elmanan kir û ji hingê ve di sebrayê de şerekî xwîndar dom dike.

Ingilîz di vê qada şer de gelek xurt in, Esker, çek û çebirxaniyên wan bê qeder zehf in. Havînê pê de tangên emêrîkanî û her texlît hesincawên cengê di riya Siwêşê re dihatin vê eniya şer.

Şerê Lîbyayê an Misrê ji 15 Îlona sala 1940î de dest pê kiriye. Hingê talyanan dirêjî Misrê kir û ordiwa Merêşal Greçyanî, di erdê Misrê de gihaşte heta Sîdî-Beranî; lê jê hir ve ne hat.

Dîsan par li 9ê Kanûna-pêşîn ingilîzan dirêjî talyanan kir; ew ji erdê Misrê derêxitin û ajotin heta Bingaziyê. Lê paşê elêman derbasî Efriqayê bûn û li 3ê Nîsana sala 1941ê ingilîz ji erdê talyanan derêxistin û ew vegerandine tixûbên Misrê, lê asêgeha Tobriqê di destên ingilîzan de ma. Elemanan Tobriq mihasere kir lê aliyê behrê vekirî ma û ingilîz tê re eskerên xwe bi xwedî dikir.

Par plana ingilîzan wekê din bû. Ingilîz ji Mersî-Metrûh û rast bi rast di peravên behrê ve meşiya bûn û pey hev Sîdî-Beranî, Selûm, Bardiye, Tobriq, Berqe û Bingazî vegerti bûn; bêî ko riya xwe bi kûrahiya çolê xin.

Lê îsal ingilîz bi planeke din ve çûn û li şûna ko ji pêşiyê dirêjî dijminê xwe bikin dil kirin lê bêne wer û wî di çemberekê de bixenîqînin.

Eleman di lîwana Helfayayê de çeper û kozikên xwe çêkiri bûn û tê de asê bû bûn. Ingilîzan xwe ne da wê xetê.

Ordiwa ingilîzan ji çend deran de dirêjî dijminê xwe kir.

Eskerên nyûzelandi ji nîvroyê Sîdî-Emer derketin û berê xwe dan Kepûço û jê derbasî Bardiyê bûn û lê hatine wer. Birekî vî eskerî ji pêşiya Bardiyê berê xwe da Cembûtê û gihaştiyê. Ji Cembûtê nyûzelandî pî dan ber eskerên ko dirêjî Sîdî-Riziq dikirin. Birekî din dirêji Tobriqê kir û xwest xwe bigihîne ingilîzên asêgehê.

Baskekî din di bakurê Madelenê û di çolê re dirêji Birelgobi kir û jê berê xwe da Sîdî-Riziq, û li qeweten elmanî ên mêkanîkî hate wer.

Ji milê din eskerine hindî di kûrahiya sehrê û di Cexebûbê re ser Caloyê meşiyan û ketin ê. Ev esker xwe pêk ditinin û dikin di riya çolê re berê xwe bidin bakur û bikevin Bingaziyê.

Bi vî awayî birekî ordiwa elmanan di navbera Kepûço, Sîdî-Riziq û Kebra-Salih de kete nav çembera ingilîzî û ji giraniya xwe qut bû. Di nav vê çemberê de tang û timobîlên her du aliyan ên zirihpoş li hev dan û hevdû kirin piç û parî. Ingilîzan Sîdî-Emer ji elmanan vegirt, lê elmanan dîsan ew bi

---

Lê gote wan ko dike here eniya Lîbyayê û dizane ko di şer de wê birîndar bibe. Lê çi bike ev jî qedera wî ye.

Rêwingiyan jê pirsî: Ma şer kengê wê biqede.

Zabit got: Şer di wexteki nîzinge de wê xelas bibe. Û dibînim ko bajarên Ewropayê di cejna Miladê de wê bi ronî bibin.

SMAÎNÊ SERHEDÎ

şûn de vegerand; û şer hinek sar bû; qey her du alî birînên can û tangên xwe derman dikirin.

Piştî 25ê Ciriya—paşîn şer ji nû ve germ bû û general Römel—fermandarê elmanî—kir ne kir û di Sîdî-Rizîq de xeta mihaserê şkênand û eskerên mehsûr gihande giraniya ordiwê. Ingilîzan bi xwe pesnê Römel û eskerên wî da.

Bêdiro, Römel bi çalakî û hinerwerîke mezin ordiwa xwe ji talûkeke mezin xelas kir. Lê hêj talibine kûr û dûr di pêşiya wî de hene.

Li 5ê Kanûna-pêşîn, ingilîzan piştî ko xwe pêk ve anî ji nû ve dirêjî talyan û elemanan kir.

Di vê êrîşê de ingilîzan Sîdî-Rizîq bi şûn de vegerand, berê xwe da bakur û mihasera Tobriqê vekir. Eleman û talyanan ji ber ingilîzan rabûn û xwe dane paş û neketin nav çembera brîtaniyan. Bi tenê qewetên ko di Selûm û Bardiyê de bûn tê de mehsûr man û ingilîz li wan hatine wer û di perava behrê re dane pey dijminên xwe û ew ber bi Xezalê ajotine û ketine Bîra-Hamid. Bîra Hamid di nîvro-rohelatê Tobriqê de ye.

Li gora danezana ingilîzî ya 14ê mehê eskerên brîtanî gehiştine pêşiya Xezalê û ji her alî lê hatine wer. Xezale li perê behrê û di navbera Tobriq û Dernê de ye. Lê hêj bêtir nizingî Tobriqê ye.

Ji milê din herwekî me li jor got ingilîz li nîvro û di çolê re ji dikin xwe Bigihînin Bingaziyê. Ev baskê ha hêj li Ciyalo ye.

Li gora rawîşa şer welê dixuye ko general Römel di pêşiya dijminekî xurt û serdert de dike xwe bispêre çiyayên ko dikevin nîvrorohelatê Dernê û tê de asê bibe. Lêbelê ingilîz bivê nevê ev plan bîr birine û ji lewre dikin di çolê û ji par re çarnikarên çiyê bigirin û ordiwa Römel tê de edim bikin an vê ordiwê hêsîr bigirin.

Ji milê din ingilîz bê etlahî didin pey ordiwa Römel û dikin jê re firsendê nedin ko bikare xwe pêk bîne.

Römel gava ji alikî eskerên xwe ên piyade dike bispêre çiyê; ji aliyê din jî bi qewetên xwe ên mêkanîkî di rastê de şerê ingilîzan dike. Bêdiro li gora nûçeyên 15ê mehê şer di rasta Tobriq û Xezalê de ji nû ve germ bûye; û welê dixuye ko vê carê zora elemanan diçe.

ENTÎKUMÎNTÊRN — Di sala 1936an de di navbera eleman, talyan û japonan de peymanek hate bû imzâ kirin, bi navê peymana entîkumîntêrn yanî peymana berbolşêvîkiyê.

Li gora vê peymanê dewletên ko ev peyman imza kirî bûn di eleyhê bolşêvîkiyê de dê bixebitiyan. Lê ji roja ko ev şer dest pê kir û ûris û elemanan peymaneke nelihevxistinê imza kirî bû ev peyman ji kar ne hatî be jî êxistin pê emel ne dikirin. Lêbelê piştî ko elemanan dirêjî ûris kir ev peyman ji nû ve hate xebitandin.

Li dawiya Çiriya—paşîn li Berlînê dorsala peymanê hate şahînet kirin û bi vê hêncetê konferansek hate danin. Sêzdeh dewlet ketine vê konferansê. Li gora elemanan ev konferans hîmê Ewropa nû û nizama wê ye.

ŞERÊ JAPON — Ji sibeha 8ê Kanûnapêşîn ve Japonye jî dewleteke şerevanî ye.

Herwekî xwendevanên me dizanin Japonye ji mêj ve hevalbendê eleman û talyanan e; û ev pênc sal in Japon şerê Çînê dike.

Di rohelatê dûr de pêşkepiyên Japonyayê Emêrîke û Ingiltere ne. Japonan digot ma çire Ingiltere û Emêrîke têkilî işên Asiyayê dibin. Ev her du dewlet jî ne asiyayî ne. Yek ewropayî, a din emîrakanî ye, bila dev ji Asiyayê berdin; em asiyayî işê xwe dizanin û emê ji Asiyayê re nizameke nû deynin.

Herçî ingilîz û emêrîkanî, wan ji ya japonan ne dikir; lê yekcar qutbiriya xwe jî ji japonan ne dikirin; û dixwestin Japonyayê mecbûr bikin dev ji şerê Çînê berdê û li gora lihevhatinekê eskerên xwe ji Çînê bikişîne. Japonan pê dida erdê. Herçî emêrîkanî ne wan jî arîkariya Çînê dikir pî dida ber wê û ew xurt dikir.

Di vê navê de japonan bi destûra Frensê (40000) esker şandin Hindeçîniyê. Ingilîz û emêrîkaniyan ev hereket protesto kirine û ebloqa Japonyayê şidandine. Ev ebloqe, ebloqeke iqtisadî bû; yanî ingilîz û emêrîkanî ne di hiştin ko Japon ji welat an mistemlikeyên wan tiştan bikire û bibe welatê xwe. Japonye ji vê ebloqayê gelek êşiya; kir ne kir Emêrîke ji şertên xwe danehat û ebloqe ranekir.

Ji alîkî ev mizakere çêdibûn; ji aliyê din her sê dewletan xwe karî şer dikir. Ingilîz û emêrîkanî wargehên xwe di Pesîfîkê de xurt dikirin. Ingilterê ji bo vê yekê hin wargehên xwe dan Emêrîkê ji. Japon ji esker tanîn Hindeçîniyê.

Di meha Çiriya-pêşîn de di Weşîngtonê de mizakera her du dewletan germ bû bû. Hinan digot wê li hev bên; hinên din digot lihevhatina wan ne maye wê ji hev qut bibin. Di vê navê de hikûmeta Emêrîkê noteyek da Japonyayê û tê de şertên xwe ên paşin jê re dan zanîn. Ev note ne hate belav kirin. Lê dibêjin ko Emêrîkê ji Japonyayê daxwaz dikir ko eskerên xwe ji Çin û Hindeçîniyê bi şûn de bikişîne.

Qederê deh panzdeh rojan ev note bê cewab ma. Rûzwelt ji imperatorê japonan re ji mektûbek rêkir.

Li 8ê vê Kakunûnê radyowên dinyayê didan zanîn ko gava sefîrê japonan li Weşîngtonê cewaba hikûmeta xwe ji Emêrîkê re ber pê dikir stol û balafirên japonî di pesîfîkê de bi ser wargehên ingilizî û emêrîkanî de digirtin.

Japonye û Emêrîke di bejê re nagehin hev. Japonye ji çend giravan bihevketî ye û ev girav dikevin bakurê rohelatê Asiyayê, dawiya welatê Ûris. Emêrike jê gelek dûr e; behir, behira Pesîfîkê dikeve navbera van her du dewletan.

Lê Emêrîke di Pesîfîkê de giravin hene û Emêrîke di wan giravan de wargehên stol û balafiran çêkirine. Stol û balafirên emêrîkanî dikarin ji wan wargehan rabin û li giravên Japonyayê xin. Nemaze giravên Filîpînê nîzingî giravên japonî ne û dikevin nivroyê wan.

Ji ber vê yekê stol û balafirên japonî beri ewilî dirêjî wan giravan kir û li girava Haway, Midwey, Weyk, û Filîpînê xistine.

Giravên Hawayê ji erdê Emêrîkê, ji Senfrensîskoyê 2200 mîl dûr in. Ev girav heçko di Pesîfîkê de berqerekola Emêrîkayê ne. Ji lewre emêrîkaniyan ew girav asê kirine û tê de wargehên stol û balafiran çêkirine. Dema japonan bi ser van giravan de girt birekî stola emêrîkanî di wargehan de bû. Welê dixuye ko stol û balafirên japonî xesareke mezin gihandine wargehan û çend cenkeştiyên emêrîkanî ên mezin bin av kirine.

Herçî giravên Filîpînê, japonan bi balafir û cenkeştiyên xwe li wan giravan ji xistine. Ji milê din balafiran eskerên piyade, ji jor de, bi peraşûtan, bera erdê dane û vaporan ji esker û tang derêxistine bejê. Bi vî awayî lingê japonan di Filîpînê de erd girt. Niho japon û emêrîkanî di bejê de ji li hev didin. Ji van pê ve japonan li hin giravên din ên emêrîkanî ji xistine û li hinan ji bi peraşûtê û di bin himayeta stolê de esker ji derêxistine.

Li gora gotina Rûzwelt xesarine mezin gihane stola emêrîkanî û wargehên wê. Nemaze di girava Hawayê de. Ji lewre Rûzwelt heyetek şandiye Hawayê da ko berpirsiyarên vê şikestinê bi nav bikin. Ji milê din her sê fermandarên pesîfîkê hatine guhartin: emîralê stolê, kumandarê eskerên bejê û generalê qewetên hewayî.

Japonyayê li pesîfîkê sê dijminên bingebîn hene: Emêrîke, Ingiltere û Holende. Ji xwe Çin ev pênc sal in şerê japonan dike.

Tistê ko bi Emêrîkê ve ye, me ew li jor got. Herçî Ingiltere; vê dewleta mezin, herwekî di her derên dinyayê de ye, li Pesîfîkê ji wargeh û mistemlikêne mihim hene.

Sengepor: Sengepor mifta behran, kilîta Pesîfîkê ye. Vaporên ko ji behra sor û behra hindî û ji peravên Efrîqa roava tên tê re derbas dibin û dikevin Pesîfîkê. Bi gotinên din Sengapor Cebeltariqeke din e û ji lewre ingilîzan ew xistiye destên xwe û asê kiriye. Sengepor dikeve nîvro û pozê nîvgirava Melayayê û bakurê girava Simatrayê. Ji behra ko asêgeh tê de ye avtenga Melayayê dibêjin. Nîvgirava Malayayê ji di destên ingilîzan de ye. Lê Melaye bi xwe di bejê re nagihe tu erdê ingilîzî. Siyam, bi navê xwe ê nû Teyland dikeve navbera Melayê û Bîrmanyayê. Bîrmanye bi xwe birek ji Hindistanê ye û di bin hikmê ingilîzan de ye.

Stola ingilîzan ya pesfîkê li Sengeporê dimîne. Balafir û noqarên japonî dirêjî avtenga Melayayê kirin û xesarine mezin gihandine stola ingilîzan.

Japonan di dora Sengaporê û di behra Bankokê de du keştiyên hêja bin av kirine.

Me got ko Teyland dikeve navbera Melayê û Hindistanê. Ji lewre japonan ji alîkî, ingilîzan ji aliyê din ajotine ser vî welatî. Ingilîzan diviya bû Teylandê bêxin destên xwe û tê re û di Melayê re esker, çek û cebir-

xanê bişînin Sengeporê. Ji japonan re ji diviya bû li pêşiya dijminê xwe bisekinin û rê lê bigirin. Japonan ji rohelê û di bejê re ajot ser Teylandê û bi vaporan esker derêxistin peravên wê ên nîvro Ev esker berê xwe da Bîrmanyayê. Teylandê qederê sê çar saetan şerê japonan kir û paşê çekên xwe danî. Japon û Teyland li hev hatin û eskerê japonî bê şer di erdê Teylandê re borin û berê xwe dan Bîrmanyayê û baskek ji ber bi jêr bû û berê xwe da Melayayê. Japon û ingilîzan li hev da û japon ketin Bîrmanyayê û hajarê Viktoryayê xistin destên xwe. Li Viktoryayê balefirgeheke mezin heye. Balafirên ko ji Hindistanê radibûn û diçûn Sengaporê jê difirin.

Herçî Melaye, eskerên japonî di Teylandê re û ji behrê ji ketine wî welatî ji û şerine no di navbera ingilîz û japonan de çêdibe. Li gora danezanên paşîn di Melayayê de japon qederkî pêş ve çûn û nîzingî li Sengaporê kirine. Lê Sengapor ciheki gelek asê ye û dibêjin ko ew hevîr gelek av hiltîne.

Ingilizan di pêşberê peravên Çînê de di hindava Kentonê de giravek heye, bi navê Honkong. Ev jî berqerekol û wargeheki ingilîzî ye. Japonan avête ser vê giravê jî. Ingilîz û japon li hir jî li hev dixin. Li hire Çin arîkariya ingilîzan dike û ji par re li japonan dixe

Japonan esker derêxiste girava Borneoyê jî. Ev girav yek ji giravên holendî ye. Ji tevayiya van giravan re Hindistana holendî dibêjin. Ev Hindistan bi pêtrol û bi her texlît madenên xwe geiek dewlemend e. Li Ewropayê Holende bi xwe herçend keti be jî destên elemanan di vê mistemlikê de hikûmet, ordû û stoleke holendî heye.

Çaryeka Borneoyê ya ingilîzan, a mayîn ya Holendê ye. Erdê ingilîzan dikeve bakurê giravê. Japonan eskerê xwe derêxiste vî birê giravê, yanî erdê ingilîzan.

Di cihên ko me li jor gotine şer dom dike. Lê hin giravên kiçik û bê ehemiyet ji niho de û yekcar ketine destên japonan.

Bi vî şerî dewletên dinyayê ên mezin têk de têkilî şer bûne û şerê me bû şerekî gelemper.

Li 11ê vê Kanûnê eleman û talyanan jî dane zanîn ko digel hevalbendê xwe yanî bi japonan re, ew jî şerê Emêrîkayê dikin. Dîsa di vê rojê de li Berlînê her sê dewletên peymana sêgane yanî Îtalye, Elemanye û Japonyayê peymaneke din imza kirin. Li gora vê peymanê ev her sê dewletên ha bêî hev bi dijmin re nakevin mizakarê û pê re tu silhê imza nakin.

Di vî şerê nû de ûris hêj rewşa xwe xuya ne kir; yanî bi japonan re ne kete şer. Ûris bivê nevê dijminê Japon e. Lê bi elemanan ewçend mijûl e ko naxwaze dijminahiya xwe eşkere bike. Herçî Japon dema ko şerê du dewletên dinyayê ên meztir dike newêre barê ûris jî hiline. Ji lewre hevalbendê ingilîz û emêrîkaniyan di Pesîfîkê de hêj ne ketiye şer. Heye ko Ûris midekî din jî di vî halî de bimîne.

Herçî Emêrîke, Rûzwelt bi xwe dihêje, bi nişkegaviya japonan di Pesîfîkê de ketiye halekî neqenc. Lê Emêrîke xwe pêk dilîne. Rûzwelt dihêje di şer de ne derba pêşîn lê derba paşîn hêja ye û bi tenê ev derb e ko dewletan digehîne zeferê, zefera rastîn.

ŞERÊ ÛRIS – Pergara şerê Ûris vê dawiyê guhêrî. Qey Kanûn, berf û serma li Ûris hatine û herçî eleman in Kanûnê ew çevandine.

Li 22ê Çiriya — paşîn eleman bi nişkegaviyê keti bûn Rovstoê; lê jê wê ve ne çû bûn. Ji ber ko Rostov li ser riya Qevqasê ye û deriyê wê tête hesêb windakirina wî ji ûrisan re tiştekî xedar û ji elemanan re zefereke mezin bû. Lê Rostov di şerê ûris û elemanan de bû fetlonekek; jê û tê ve qedera şer guhêrî. Ûris li elemanan vegeriyan ew ji Rostovê derêxistin, ketin pey û ew ajotin heta Tagendrofê. Elemanan baz da û xwe di dora Tagendrofê de li ber ûris girt.

Ji milê din Zivistana wî welatî li elemanan dişidand. Dibêjin ko di dora Moskoyê de piyadeyên elemanî êdî nikari bûn xwe li erdê pehin bikin. Ji lewre ji piyan disekinîn û welê şer dikirin. Çimkî heçî ko li erdê pehîn dibû di çend deqîqan de bi berf û kurşê ve dizeliqî û nema jê vedibû. Herçî ûris eskerên sîbêrî anî bûn dora Moskoyê. Xelkê Sîbêryayê salê pê de di nav berfê de dijîn. Ew dimînin kurmên berfê. Ji berfê aciz nabin lê nikarin jê bigerin. Heke jê geriyane yanî ji berfê derketin nema dikarîn bijin. Bêdiro

heke mirov kurmên berfê ji berfê deranî ew kurm dimirin.

Hitler digot me karê xwe kiriye emê li Zivistanê jî şer bikin û zora ûrisan bibin. Lê gotina wî ne çû serî û general Zivistan hate hawara ûrisan.

Piştî Rostovê eleman di eniya Moskoyê de jî şikestin û bajarên ko bi şerine no keti bûn ê, ji dest dan û bi şûn de vegeriyan. Ji 6ê Kanûna-pêşîn ve eleman terka bajarên dora Moskoyê didin û ûris dikevin ê. Li 13ê vê Kanûnê hikûmeta ûris ji Kwibişefê vegeriva Moskoyê. Ji ber ko Mosko weke berê bû bû bajarekî bi selamet; ordıwa elemanan jê bi dûr keti bû û siwariyên ûris da bûn pey wê.

Herçî eleman, wan jî danezanek belav kir û tê de got ko ji ber xurtiya sermayê şer di eniya ûris de sekeniye û ordiwa elemanî heta Biharê wê di midafehê de bimîne û xeta şer ji nû ve û li gora şerê midafehê wê bête saz kirin û ji lewre di hin cihan de eskerên elemanî xwe didin paş û dikin bikevin çeperine nû.

Lê ûris ji elemanan nagerin; her û her dirêjî wan dikin da ko eskerên elemanî yên ko xwe didin paş tu firsendê nebînin ji bona ko ji xwe re istihkamine nû bikolin û bikevin ê. Heçî deran de jî ko eleman ketine istihkamine nû ûris di wan deran de ji hicûmî elemanan dikin. Bi kurtî heta niho eleman dirêj dikir û ûris xwe dida alî û li ber xwe dida. Lê ji vê Kanûnê ve ûris dirêjî elemanan dikin û eleman tabye û istihkaman dikolin û dikin tê de xwe midafehe bikin.

Herçî Lêningrad weke xwe ye. Eleman di dora bajêr de sekinîne. Di nîvro de Sevestopal di bin mibaserê de ye û hawara wê di riya behrê re têt.

Şam : 19 Kanûna-pêşîn 1941 NÊREVAN

# ŞAHÎNO

Strana Şahîno straneke cihê Botan e. Me du guhartoyên Şahîno hene. Lê her du jî ne temam in. A pêşîn ji « v » yên wê xuya ye ko ew yekî erihî gotiye. Ji ber ko xelkê Erihê weke serhediyan « b » yan bi « v » yê diguhêrînin. Herwekî li şûna « cewabkê » gotiye « cewavkê ». Dîsan gotina « bê » bi «vê» yê guhartiye û gotiye « Heger hindik vê ».

— 1 —

Hey malikwêrano, Şahîno tu dey nakî
Tu şixlekî, emelekî d'mala bavê xwe de nakî
Qelenê mi giran e, tê ji kû peyda kî?
Havîn e, xweş Havîn e,
Dar û eqarê mala bavê mi çêbîne.
Xelkê digo Ehmedxan gul e, mi digo kula dilê min e.
Bihar e, malê me çûne zozana,
Ezê kolekê ji Şabînê xwe re çêkim ji gul û rihana
Heke hindik vê, ezê ker kim ji mala cirana.
Dewarê mala bavê min hesp in,
Serbarê wa xurme ne, binbarê wa qesp in,
Cewavkê bidin Şahîn axa hosyanya ez xwestim.
Dewarê mala bavê mi hêstir in,
Serbarê wa xurme ne, binbarê wa şekir in
Bi xwedê kî cewavkê bidin Şahîn axa hosyanya ez birim,
Şahîno mal î wêrano tu dîn î, tu ne dîn î...
Tu kaxez pê kaxeza dişînî,
Qelenê mi giran e, tê ji kû bînî?
Şahîno tu dîn î, tu ne dîn î,
Tê xweyê canika bozheşîn î,
Ti ne ew mêr î, mi bixwazî yan mi birevînî.
Şahîno kurê axê.
Rezikê Şahînê mi li ber kezaxê.
Tu vî destê mi bigre, birevîne, agirkî berde vî milk û vê ocaxê.

— 2 —

Şahîno dîno rabe mi birevîne emê herin zozana,
Ezê kolekê ji Şabînê xwe re çêkiim ji gul û bergê rihana,
Heke têr î ne kir ezê ker kim ji malê gundî û cirana.
Şahîno! dîno tu dîn î, tu ne min distînî, ne min direvînî,
Nextikê mi giran e, te ji kû bînî,
Tu ji Xwedê natirsî etfa zivî li ser sîngê mi dihejînî.
Sîngê mi bêxçê gulan û sêvan e, dema bihna te teng bî,
Were demkê, da tu xemên dilê xwe jê birevînî.
Xaniyê bavê min mezin e, êla koçera danî li bin e
Mi şevêdî xewnek ya xêrê li xewna xwe dî bî,
Mi dî dêka te rebenê dibî xwesûya min e.

# Kitêbxana Hawarê

Hejmar:

1 — Rêzana Elfabiya Kurdî C. A. Bedir-Xan.
2 — Rupelnine Elfabê C A. Bedir-Xan.
3 — Dilê Kurên Min Dr. K. A. Bedir-Xan.
4 — Bîyîşa Pêxember. Bi Kurdiya dumilî, bi dibaca C. A. Bedir-Xan
5 — Nivêjên Êzcdiyan bi dibaca C. A. Bedir-Xan
6 — Mektûb ji Mistefa Kemal paşê re
7 C. A. Bedir-Xan
٦1 — Mesela Kurdistanê Bazil Nikitîn
8 — Ji mesela Kurdistanê C. A. Bedir-Xan
9 — Elfabeya Kurdî Dr. K. A. Bedir-Xan
10— Xwendina Kurdî Dr. K. A. Bedir-Xan
11— Elfabeya min Dr. K. A. Bedir-Xan
12— Dersên Şerietê Dr. K. A. Bedir-Xan
13— Çarînên Xeyam Dr. K. A Bedir-Xan
14— Proverbes Kurdes. Medhelokên Kurdî Lucy Paule Margueritte û Emîr. K. A. Bedir-Xan Paris - 1937
15— Le roi du Kurdistan. Qralê Kurdistanê. Emir K. A. Bedir-Xan û Adolphe de Falgerolle. Paris - 1937
6— Der Adler von Kurdistan. [illegible]loyê Kurdistanê. Prinz K. A Bedir-Xan û Herbert Örtel Berlîn - 1937
17— Der Schnee Des Lichtes. Berfa Ronahiyê Şihrên Kurdî Prinz. K. A. Bedir-Xan û Dr. Curt Wunderlich Berlîn - 1937

# Kiryariya Hawarê

| | | | |
|---|---|---|---|
| Salî | 500 | Qirûşên | Sûrî |
| Şeşmehî | 300 | Qirûşên | Sûrî |
| Sêmehî | 200 | Qirûşên | Sûrî |

Xwedî û gerînendeyê berpirsiyar: Mîr Celadet Alî Bedir-Xan. Şam—Sûriye
Directeur Propriétaire : Emir Djéladet Aali Bedir-Khan. Damas—Syrie

SAL 10
HEJMAR 38

PÊNCŞEMB
22 KANÛNA-PAŞÎN 1942

ANNEE 10
NUMERO 38

JEUDI
22 JANVIER 1942

# HAWAR

## KOVARA KURDÎ ★ REVUE KURDE

TÊXISTIYÊN VÊ HEJMARÉ



ŞAM—1941
ÇAPXANA SEBATÊ

SAL 10
HEJMAR 38
PÊNCŞEMB
22 KANÛNA-PAŞÎN 1942

# HAWAR

ANNEE 10
NUMERO 38
JEUDI
22 JANVIER 1942

KOVARA KURDÎ ✶ REVUE KURDE

## TEFSÎRA QURANÊ

250 — Gava wan bi Calût û eskerên di wî dest bi şer û kuştinê kirin, Talût û eskerê wî gotin: Xudanê me ê mezin.... me bi sebr û mêraniyê bişidîne û li ser qewmê kafiran nisretê bide me.

251 — Xuda nisret da wan û bi destûra Xwedê zora dijminên xwe birin û Dawûdî Calût kuşt. Xwedê jê re pêxemberîtî û mîrîtî da û jê re her çi jî wî xwest da zanîn.

Heke Xwedê destê hinan bi hinan ne girta û bi vî awayî di dinyayê de tixwîbên rêz û tertîbê qaîm ne kira, dinya xira dibû, lê kerem, qencî û piyariya Xuda li ser erd û ezmanan e.

252 — Ev ayetên Xuda ne, em ji te re didin zanîn, bê şik û şibhe ev rast in û tu jî pêxemberê Xuda yî.

253 — Me hin pêxember ji hinên din çêtir girtine. Hin ji wan hene ko bi wan re Xuda rastbirast peyiviye. Xuda qedrê hinan ji hinan bilindtir kiriye. Me ji Îsa kurê Meryemê ra mûcize û hicet dan û me ew bi rûhê miqedes zexm kirin.

Heke Xuda bixwesta piştî hatina pêxemberan û ayetên Xwedê yên ko şanî riya rastiyê dikin, xelk hev û du ne dikuştin; lê wan bi hev ne kirin; birekî ji wan bi dînê Xwedê baweriya xwe anîn, birekî din kafir bûn. Heke Xuda bixwesta ew li hev ne diketin û hev û du ne dikuştin. Lê Xwedê her çi jî dixwaze dike.

254 — Gelî bawermendino.... Ji malê xwe tiştên ko me bi dana wan emrî we kiriye bidin; bidin berî wê roja ko tê de kirîn nîne, hevalîtî û xatir girtin nîne, kes ni kare mehdera kesekî bike.

Ên ko kafir in, zalim in û ên ko zekatên xwe ne dane, weke kafiran zilm li nefsa xwe kirine.

255 — Xwedê yek e û ji wî pê ve tu Xuda nîne, sax e; her sax e; abadîn e, her hebû, her heye û çûna wî nîne. Ne diponije û ne jî radize.

Her tiştên erd û ezmanan milkê wî ne. Tu kes bê destûra Xwedê ni kare mehdera kesekî bike.

Ew pêşî, hal û dawiya me dizane. Ew bi qasî daxwaz û destûra xwe, me digehîne zanîna xwe.

Textê wî dora erd û ezmanan digire û parastina erd û ezmanan jê re ne tu zehmet e. Ê bilindtir, ê mezintir, û ê çêtir ew e.

256 — Di dînê Xuda de, zorkirin nîne. Tu kesî ji bo na ko ew bibe misilman me êşînin. Êdî bi kerema Xwedê kufr û dîn, rastî û nerastî ji hev veqetiyane.

Yên ko destên xwe ji parastina Taxûtê, ji pûtên mişrikan kişandine û baweriya xwe bi Xwedê anîne; wan destên xwe xistine destikekê xurt û jê venaqetin. Xwedê dibihîse û zana ye.

257 — Xuda piştxurtî û arîkarê bawermendan e. Xuda wan digihîne ronahiyê, lê muîn û arîkarê kafiran Iblîs e, û ew wan ji ronahiyê dibe tariyê.

Kafir wê bikevin agirî û ew her tê de bimînin.

258 — Ma te ew ne dîtiye ?... Ew Nemrîdê ko ji kerema Xwedê xudan milk û dewlet bû bû, paşê nefsmezinî kir û rabû bi Ibrahîm re di mesela mezinahiya Xwedê de pev çû... Gava Ibrahîm jê re got: Xudanê min ew e ko dimirîne û miriyan vedijîne. Nemrûd got: Ez jî dimirînim û vedijînim. Lê gava Ibrahîm lê vegerand û got: Xudayê min rojê ji rojhelatî dide hilatin, ka tu wê ji rojavayî bide hilatin.

Vê gavê Nemrîdê kafir şaş bû.

Ji ber ko Xwedê zaliman nagihîne riya rastiyê; ew ji kerem, piyarî û arîkariya Xwedê dûr in.

259 — Ma te ne bihîstiye.... Ji wî mirovê ko di ber gundekî hilweşandî re derbaz dibû û gava halê gundê wêran û kambax dît ji xwe re got: Ma Xwedê çawan vî miriyî, vî gundî, vî xirbeyî dikare ji nû ve ava bike.

Xuda ew mirov mirand, sed sal mirî hişt û piştre wî ew vejand û jê pirsî: Tu çiqasî li vir mayî? Wî got: Rojekê an danê rojekê. Xuda got: No... sed sal in tu lê yî. Li xwarin û vexwarina xwe mêze ke, ew xira ne bûne; li kerê xwe jî binêre; em dixwazin tiştên ko me anî serê te ji xelkê re bibe ibret û li hestiyên kerê xwe fedkire... me çawan hestiyên wî dane hev û piştre me goşt li wan kiriye.

Gava wî ev tiştên ha dîtin got: Min zanî, Xuda bi her tiştî dikare.

260 — Wê demê bînin bîra xwe... Gava Ibrahîm got: Xudanê min ji kerema xwe pêş min bike, tu çawan miriyan vedijînî? Xuda got: Ma te hêj baweriya xwe bi min ne aniye?

Ibrahîm lê vegerand û got: çawan... min baweriya xwe bi te aniye,

Lê dixwazim bi çavê xwe bibînim û pê dilê xwe bişidînim.

Xuda jê re got: çar teyran bîne û wan xweş nas bike û paşê wan teyran ker bike, perçe bike û her perçeyekî ji wan bavêje ser çiyayekî, piştre banî wan bike, lez û bez ewê bên cem te û êdî bizane ko Xuda delal, xwedîqudret û fêris e.

261 — Yên ko di riya Xwedê de ji malê xwe bi xweşdiliyê didin, mîna tovekî ne ko jê heft sinbil derketiye û her sinbilekî wî sed heb girtine. Xuda ji kijikî re dixwaze du caran dide. Xuda zana ye û comerdiya wî mezin e.

262 — Yên ko malên xwe, bê minet û bi xweşdiliyê di riya Xwedê de didin û êdî qala qenciya xwe na kin, Xuda wan digihîne xeyr û kerema xwe. Ji bona wan di roja piştdawiyê de tirs nîne û ew xemdar nabin.

263 — Gava parsek di xwestina sedeqeyê de we aciz dikin bi wan re gotineke şîrîn û efiw kirina qisûra wan ji dayineke bi minet û eza çêtir e,

Xuda dewlemend û dilnerm e.

264 — Gelî bawermendino... Xeyr û qenciya sedeqeyên xwe bi minet û ezayê xira ne kin, me bin mîna wan ko ji ber dîtina xelkê ji malê xwe tiştekî didin lê baweriya xwe bi Xwedê û bi roja piştdawiyê ne anîne. Ew mîna zinarekî ne ko ax li ser e, baraneke xurt lê dikeve, ax diçe û zinarê hişk rût dimîne. Ew ji xeyra qenciya xwe bê behr dibin

Xwedê riya qencî û rastiyê pêş kafiran na ke.

265 — Lêbelê yên ko malê xwe di riya Xuda de ji bo pêkanîna emr û mirazên Xwedê û ji bo zexmkirina baweriya xwe didin, mîna bîstanekî cihbilindin ko lê baraneke xurt datê an xunavek û hatina wê ducar dibe.. Xuda tiştên ko hon dikin dibîne.

266 — Ma kesek ji we dixwaze ko ew xudanê dehlekî be, bi av û kanî,

# ZERDEŞT

Wexta ko Zerdeşt sih sali bû, ji weletê xwe derket, dev ji gol û kaniyên erdê xwe berda û hilkişiya ser çiyan û tê de deh salan xweşiya tenahî û lezeta eqilmendiya xwe tam kir û jê têr ne bû.

Lê dawi fikra xwe guhart û rojekê li rohelatî hat pêşiya rojê û got :

Tu stêra mezin ! Halê te çi dibû heke yên ko tu rondar dikî ne hebûna, wê gavê sirûd û-mezinahiya te bikêrî çi dihat ? !

Deh salan pê de, her roj tu bi hewa diketî û dihatî hir, heta ber şikefta min û te em rondar dikirin; bê min û mar û eyloyê min, bê şik tu ji riya vî çiyayî û ji roniya xwe aciz dibûyî . . .

Lê me her ro di sariya sibehê de çavnêriya te dikir û ronahiya te a zeyde dibir û em pê şikirdarê te dibûn û pesnê te didan.

Binêre . . . ez ji eqilmendiya xwe aciz bûme, mina mêşa hingivinê ko ji piraniya hingivê xwe têr dibe, min destin divêtin yên ko xwe dirêj dikin û dixwazin. Ez dixwazim diyari bikim û lêkvekim; heta ko di nav mirovan de, ên aqil bi dinitiya xwe û ên feqîr û belengaz bi dewlemendiya xwe ji nû ve şa bibin.

Ji bona vê yekê divê ez bikevim xwar, herweki tu li êvarê dikî, dema ko dadikevî li wî aliyê avê, heta ko ji dinyayê jêrin re roniyê bini. O . . . tu, stêra dewlemendtir . . .

Herweki mirov dibêjin, divê ez herim ava, dakevim xwar da ko bigehim mirovên ko hewcedarî zanin û dewlemendiyê ne.

O tu çavê rahet û bêteşxele, tu î ko bê hesed û tima dikari li siûd û bextiyariyeke mezin ji binêri . . . Were, xêr û qenciya min bixwaze ! ! Xêr û qenciya wê piyanê bixwaze, ya ko dike di ser ra birije, ta ko aveke zelal û zêrin jê biherike û geşi û xweşiya roniya te bibe her derî . . . Binêre ! Ew piyan dike careke din vala bibe û Zerdeşt dixwaze ji nû ve bibe mirov.

Daketina Zerdeşt bi vî awayî destpêkir. Zerdeşt ji çiyê bi tenê kete xwar û kes rastî wî ne hat.

Lê dema ko zerdeşt giha rêl û daristanan, ji nişka ve dît ko li ber wî miroveki pîr sekiniye; ew ji holika xwe derketi bû û dixwest li daristanê rayê giyan û pelên heşînatiyan berhev bike.

Û wî bi awayê jêrin dest bi axaftinê kir û got : Ev rêwingiyê he ji min re ne keski xerib û nenas e; berî çend salan ji vir bîrêbiwarı derbaz bû bû; navê wî Zerdeşt e, lê xwe guhartiye.

O Zerdeşt ! Tu di wî wextî de xweli a xwe diani çiyê; gelo tu dikî niho agirê xwe bini deşt û nevalan ? !

Ma tu ji cezayê ko pê mirovên şewatker têne êşandin na tirsî ?

Erê, ez Zerdeşt nas dikim, çavên wî pak û zelal in; û tu xirabî di devê wî de cih na gire. Ma meşa wî ne mîna wi mirovi ye ko ketiye govendê ! Zerdeşt hatiye guhartin; Zerdeşt bû bû mîna zarokekî; Zerdeşt niho miroveki sere û hişyar e; ma tu li ba mirovên razayî çi digerî, tu ji çûyîna ba mirovên razayî çi hêvî dikî ?

Te di bêdengî û tenahiyê de mîna li behrê emir dikir û behrê tu li ser pêlên xwe hiltanî ! Wey li te, tu dikî niho bikevî erdê? Ax li te, tu dikî ji nû ve barê giyanê xwe hilgirî ?

---

têr darên xurme û mêw û fêkî û ew pîr be û zaroyên wî biçûk bin û biderbekê babiliskeke germ û agirnak wê dehlê bişewitîne? Xuda bi vî awayî ayetên xwe pêş we dike heta ko hon serwext bin.

267 — Gelî bawermendino . . . Ji kedên xwe ên qenc û ji zadên erdê ko me ji we re da gihaştin di riya Xwedê de bidin.

Gava didin, tiştine qenc û hêja bidin, tiştine welê ko heke ji we re bihata dayîn, we ne seha şermisariyê lê bi kêf û xweşdiliyê bistandana.

Bizanin ko Xuda dewlemend e û qedrê evdên xwe digire.

Ji bona Tefsîra Quranê K.K. û li hejmaêrn 27, 28, 29, 30, 31, 32, 33, 34, 35, 36, û 37an fedkirin.

Zerdeşt lê vegerand û got: Ez ji mirovan hez dikim.

Mirovê pir û miqedes got: Ma çire min xwe kişandiye tenahiya rêl û daristanan... ne ji bona wê yekê ko min gelek hejî mirovan dikir. Niho ez ji Xwedê hez dikim û ji mirovan hez na kim; mirov tiştekî nepêkhatî ye û hevîna wan ez bikuştama.

Zerdeşt lê vegerand û got: Min qala hejkirinê kir, ne were ye? Ez ji mirova re diyariyekê tînim! Mirovê pir û miqedes got: tu tiştek me de wan; çêtir ji wan tiştekî bibe û pê barê wan siviktir bike û barê wan ê mayî bi wan re hilgire; ewê pê hêj kêfxweştir bibin; bi tenê heke tu ji pê dilxweş dibî?..

Zerdeşt got: No... Ez sedeqê na dim, ji bona dana sedeqê divê mirov zehf feqîr be; ez ne hinde belengaz im.

Mirovê pîr û miqedes bi ser zerdeşt keniya û got: De binêre; ko ew diyariya te qebûl bikin. Ew ji mirovên ko di tenahiyê de dijîn ne ewle ne û pê qîma xwe na yênin û bawer na kin ko ew tên da ko diyariyekê bidin wan.

Dema ko em dikevin bajarê wan û li ser riyên wî ên tena dimeşin, pêjna piyên me li wan nexweş tê; û berî bi saetên ko ro hiltê gava ji rê û kûçan dengê piyên me dibihîsin, ew di textê xwe de texmîna dikin û ji xwe re dibêjin: Gelo ew diz dixwaze here kû.

Meçe ba mirovan û di rêl û daristanan de bimîne! Hêj çêtir here nav dehban! Çire na xwazî mina min bibî... di nav hirçan de hirçekî û di nav teyran de teyrekî...

Zerdeşt jê pirs kir û got: Mirovê kal û miqedes di nav rêl û daristanan de çi dike? Mirovê pîr û miqedes lê vegerand û got: Ez stranan çêdikim û wan dihêjim; û gava ez stranan çêdikim, dikenim, digirîm û dinehwirînim û pê pesnê Xwedê didim. Bi stran, girîn, kenîn û nehwirandinê Xwedê dipe.inînim; yê ko Xudayê min e.

De bêje, te çi diyarî aniye me?

Gava Zerdeşt ew xeber bihistin, selav li pîrî kir û got: Ma, ez çi dikarim ji we re bigerînim diyarî; baştir ew e ko berdin, bila ez zû ji vir herim; ta ko ji we tiştekî me stînim!

# DÎWANA MELÊ

— 12 —

Min di dil kovan hezar in, daẍ û keybir bê hisab
Mihneta werdên bixar in wê di dil da sed nişab
Sed nişab in min di dil îro ji xarên sorgulan
Yek bi yek peykan civî bûn çûne cergê da kulab
Pir bi wan cerhan xweş im, lew ko tên derman dikin [1]
Şerbet û ava heyatê şekir û qend û gulab
Ger du sed peykan di nêva dil biwan dê xweş biwan
Her dema kewkeb bidîna necm û perwîn bê hicab
Zihre û eqda sireya kifşe bûne ew di şerq
Sayeya bextê me daim ma li ser perde niqab
Wajgûn dewrê nima min çerx û bayê lewleban
Kewkeban seyri mixalif girtî têkil kir hisab
Vêketin [2] Şems û Zihel îro di birca eqrebê
Heyf çû destê Merîxê milki dil lew bû xerab [3]
Lew tenezil kir Merixê nobe çû dewre Zihel
Çû teref mihra sipehrê nez-zilî erdan ezab
Lew ji şeş bircan Etarid j'afitabê dûr bû
Lê Zihel bû Mişteri avête çerxê inqilab
Şew-wişî nezma nicûma heyeta çerx û birûc
Lew li wesfek dernetêtin mah û Zihre afitab
Minqelib min dî menazil vajî ew seyrê dikin
Yek bi yek xûn jê dibarin ateş û lemh û şehab
Zihreyê cengê siwar in dî ji çeng avêt çeng [4]
Xweş li pey qanûni wî, wê guh de tu qanûn ribab
Ez dibêm axirzeman e, dê qiyamet rabitin
Lew şeva tarî kişandî wî ne hişt eswed ẍurab
Xweş li min alem siyeh ma stêr û kewkeb qet ne ma
Ez ji wê rojê ditirsim axirî zû kir şitab
Ev ne ew iqlîm e ya şems û kewakib tê di seyr [5]
Ez ne wê erdê dibînim ya ko lê ew mahitab
Cin û teyarek me dî wer bû li min [6] winda kirim
Dame ber penc û kulaban hilfirandim wek iqab
Siflewî înam û avêtim zemîna zilmetê
Lê ko hişyar im gelo ya xewn e min dîtî bi xab
Dêwê mel'ûni minafiq ey Xwedê rûreşkirî
Me bi bala hilkişînit aqibet çi bit selab.
Sirperî ilef nizanî sihriya ebyed diket
Pir ẍelet erzan me di der heqê wî alîcenab [7]
Ehremen talîm da bû desti ebyed tê hebû

---

Bi vî awayî mirovê pîr û mêrê sere bi ken û xweşî ji hev veqetiyan, bi kenê ko du zaro pevre dikin û pê şa dibin.

Lê dema ko Zerdeşt bi tenê ma, ji xwe re got: Ma imkana wî heye...! Vî mirovê pîr û miqedes di nav rêl û daristana de hêj ne bihîstî be ko Xwedê miriye. [*]

SEYDAYÊ GEROK

---

[1] Ji vî Xudayî mexsed ne Xudayê erd û ezmanan e; lêbelê baweriyên pûç û şaş in.

# EMÊRÎKE

## XWE ÇAWAN KAR DIKE

Emêrike xwe kar dike, xwe ji bo şerekî dûr û dirêj kar dike. Ji gotinên Mister Rûzwelt wer dixuye ko şerê japon û emêrîkaniyan wê gelek dom bike û Emêrike ne bi tenê di Pesîfikê de, lê di her qadê de wê bikeve şer û heta zora dewletên mihwerê biçe şûrê xwe venagerîne kalanê wî.

Mister Rûzwelt li 7ê Kanûna Paşin di peşberê Kongrê de nitqek daye : « Divêt em nehêlin ko dijmin nizingî peravên me bibe. Divêt em xwe bigehînin erdê wî û şerê xwe di erdê wî de bikin. Eskerên emêrîkanî ji bo çêkirina dijmin wê herin her derên dinyayê, lê bêne wer û zora wî bibin. ».

Piştre Mister Rûzwelt ji kongrê re da zanîn ko ji bo serbestiya dinyayê û çêkirina dewletên mihwerê divêt Emêrîke mesrefine mezin bide ber çavê xwe. Ji niho de di bidca berbiyê de 56 milyar dolar hene.

Rûzwelt dibêje ko heta sala 1943an balafir û tangên Emêrîkayê ji vên mihwerê wê sê caran bêtir bibin. Yanî di pêşberê tang an balafireke mihwerê de sê tangan sê balafirên emêrîkanî wê hebin. Febrîkeyên emêrikanî di sala 1942an de wê ( 60 000 ) balafir (45000) tang û (20 000) topên berbalafir çêkin. Herçî sala 1943an e, di wê salê de emêrikanî (125000) balafir ( 75 000 ) tang û ( 35 000 ) topên berbalafir çêkin. Ji van pêve tersaneyên emêrikanî di sala 1942an de 8 milyon ton û di sala 1943an de 10 milyon ton vapor wê bînin wicûdê.

Rûzwelt beriya ko nitqa xwe biqedîne gotiye : Ev hejmar besî japon û elemanan in. Ewê ji van hejmaran bizanin mirov çawan digehe zeferê.

SMAÎNÊ SERHEDÎ

---

Pir bi wê talîm û rayê hati bû çû bû xitab
Ab eyamên wê wisalê ew ko xweş borîn û çûn
Ew şeraba îş û nûşê ma li pêşber min serab
Şerbeta şîrînleban zehra bilahil bû di nav
Lew bi narê firqetê axir li min dil bû kebab
Hudhudek xweş tebhe min îro divê herwek nesîm
Da bi bal dilber hinara b'aniya dîsa cewab
Erzihalê min bigota yê bi inwana edeb
Asitan bikra ziyaret çetr û seywan û teneb.

# NOQAR

## YANÎ VAPORÊN KO DI BIN BEHRÊ RE DIÇIN

Ji şerê 1914 û 18an ve du çekên nû dikevin ber çavan : noqar û balafir. Ev her du çekên ha ji gelek caran bera çekine din, çekine ji xwe meztir didin û zora wan dibin. Noqar an balafirek carina cenkeştîke bi 30 000 tonî an jê mêztir bin av dike. Balafir di ezmanan de difire, noqar di bin ava behrê re diçe. Di vê bendê de emê qala noqaran bikin.

Îşê noqarê berî ewilî di sala 1777an di şerê istiqlala Emêrîkê de hate bîra mirovan. Emêrîkaniyan ji bo istiqlala xwe şer dikir. Heta bingê Emêrika bakur ne bi serê xwe lê mistemlekeke ingilîzî bû. Herçî Kenade ew jî mistemlekeke frensizî bû.

Ingilîzan ji emêrikaniyan hêsîr girtî bûn. Ew hêsîr li vaporan siwar kirî bûn û dikirin bibin Ingilterê. Ew vapor di bendera Nûyorkê de kar bû bûn û cenkeştîke ingilîzî bi navê Îgel ew vapor dihemandin. Yekî emêrikanî bi navê « Davîd Bihnel » noqarek çêkirî bû û navê « Tûrtel » lê kirî bû. Tûrtel ne weke noqarên îro bû. Bi tenê noqî avê dibû û di bin behrê re diçû. Şiklê wê girover û dirêj weke sîgarekê bû. Tê de peyakî bi tenê rûdinişt û ew dimeşand. Serê noqarê wek singokê tûj bû û pê ve bimbeyek hebû. Noqarê diviya bû dirêjî dijminê xwe bikira û bi singowa xwe ew qul bikira. Di vê qulê re bimbe wê biketa hundirê vaporê û wê tê de biteqiya.

Li 25ê Nîsana sala 1777an de noqarê di bendera Nûyorkê de dirêjî cengeştiya ingilîzî Îgel kir. Lê ji ber ko singowa noqarê nikari

---

Da di çesman min werîna xakê herwek tûtiya
Ya hebîb lê pê nihadê b'aniya wî ew tirab
Her kesê rabê bi behsê carekê mehder biket
Xêrî heftê hec didêrî belkî behtir ew sewab
Wehde da bû dê şehîd kim wî bi şûrê xwe î şerîf
Ma nebî îro peşîman ew ji tedbîra sewab
Şerhi halê min mela neçî beyadê hê temam
Wê siwadê gerçî her dem jê birin sed intixab.

FERQÊN NIVÎŞTAN

— 12 —

[ 1 ] Pir bi wan cerhan xwe têr in lew ko dî derman dikir. [ 2 ] Vêk ketin. [ 3 ] Sêf çû destê Merixê milkî dil lew bû xerab. [ 4 ] Zihreyê çeng siwa j'ev dî ji çeng avête çeng. [ 5 ] tê bi seyr. [ 6 ] di min. [ 7 ] Pir xelet erzan me dî derheq xwe û alîcenab.

bû bi temamî bedena cenkeştiyê qul bike bimbe ji der ve teqiya û xesar ne giha cenkeştiyê. Lê cenkeştiyê jî tu xesar ne gihande noqarê. Ji ber ko naqar beriya ko cengeştî li topên xwe bixebite noqî avê bû û xwe jê xelas kir.

Ev tecriba pêşîn bû û ne çû serî. Sed sal ketine navê, emêrîkaniyan şerê hevûdu dikir. Ordiwa Emêrîka bakûr di nivro de bajarê Çerlestonê mihasere kiri bû. Noqa rekê dirêjî kerewzora Nû - Eyrenseyd kir. Nû - Eyrenseyd kerewzoreke xurt bû. Noqara ko dirêjî wê kir bi navê « David Lêgel » bû. Tê de sê peya hebûn Di pêşiya vê noqarê de ji singoyek hebû. Bi singoyê ve ji bimbeyek bi pênci kilo barût hebû. Vê noqarê jî diviya bû xwe li dijminê xwe biqelibine û bedena wî qul bike. Noqarê dirêjî krewzorê kir. Lê deryavanên krewzorê zû lê hişyar bûn û bera wê dan. Guleyek ket serê noqarê û her sê peyayên noqarê teslîm bûn. Bi vî awayî ev tecribe jî peşilî. Digel vê hindê mihendisên behrî dev ji vaporên binbehrî bernedan û lê xebitîn.

Di sale 1880î de mihendisekî talyanî bi navê Remezonî li ser hisabê hikûmeta Frensê noqarek çêkir. Ev noqar di bendera Tûlonê de daket behrê. Dirêjahiya noqarê 20 mêtir bû û noqar bi 180 sentîmetir bi ber bû. Lê vê noqarê jî aletên torpîlavêj nîn bûn. Evê jî wek yên berê diviya bû xwe li dijminê xwe biqelibîne û bi vî awayî bimbeyên xwe biteqîne. Digel vê hindê ev noqar wek maka noqarên îro tête hesêb. Lê ev noqar ne kete şer.

Noqarên torpîlavêj di şerê 1914an de peyda bûn û di vî şerî de ketine şikileki tekûztir. Di noqarên îro de li gora mezinahiya noqarê 40-50 deryevan, çend top û torpîl hene.

Bi tenê japonan, di şerê Pesîfîkê de noqarine nû bi kar anîne. Dibêjin ko ew noqar gelek hûr in û bi destên du peyan têne xebitandin. Di van noqaran de torpîleke bi tenê heye û ev noqar beta sê sed mêtirî dikevin binê behrê. Dîsan dibêjin ko vaporine xweser van noqaran li xwe siwar dikin û gava nîzingî dijmin dibin wan dadixin behrê. Li gora vê gotinê divêt wek vaporên balafirhilgir vaporên noqarhilgir jî hebin.

CEMÎLÊ TACDO

# TIŞTÊN PESÎFÎKÊ

Bi şerê japonî ji her wextî hêtir deng bi Pesîfîkê ket. Ji lewre me dil kir ko xwendevanên xwe li ser hin tiştên Pesîfîkê serwext bikin.

PESÎFÎK — Pesîfîk yek ji pênc behrên dinyayê ên mezin e. Pesîfîk dikeve navbera Asye û Emêrîkayê. Rohelatê behrê Emêrîke, roavayê wê Asya ye. Bi gotinên din Asye dikeve rohelatê Pesîfîkê û Emêrîke di roavayê wê de ye.

Japonye di vê behrê de wek Ingilterê welatekî giravan e. Ev girav di rohelatê Asyayê de ne û dikevin pêşberê Mençûko û Sîbêryayê. Di nav van giravan de a meztir Nîpon e; ji lewre ji japoniyan re nîponî jî dibêjin.

Di Pesîfîkê û di navbera Japonye û Emêrîkê de giravine din jî hene. Hinek ji van giravan yên Emêrîkê, hinên din jî yên Japonyayê ne, û ev girav têk de wargehine behrî û hewayî ne. Herçî giravên ko li ser riyên behrî ne bi piranî di destên Emêrîkê de ne. Di navbera Japonye û Eemêrîkê de du riyên bingehîn hene.

Yokohama - Senfrensîsko — Yokohama bendera japonî û Senfrensîsko bendera emêrîkanî ye. Li ser vê riyê girav û wargehê Harbûrê heye. Ji Yokohama heta Harbûrê ( 2595 ) û ji Harbûrê heta Senfrensîsko ( 1941 ) mîl in. Di navbera Yokohama - Senfrensisko re rêke din jî heye û ev dikeve nîvroyê riya pêşîn. Ev rê di girava Midweyê û giravên Hewayê re diçe. Ji Yokohama heta Hewayê ( 3379 ) mîl û ji Hewayê heta Senfrensîsko ( 2068 ) mîl in.

Giravên Hewayê wargehekî gelek mezin û bi ehemiyet e. Kişwerê Hewayê ji çend giravan têie pê. Honolûlû mezkeza van giravan û wargehê stola emêrîkanî ya Pesîfîkê ye. Dibêjin ko emêrîkaniyan ji bo çêkirina vî wargehî bilyonek dolar serf kirine. Nifûsa Hewayê ( 256000 ) e. Ji vê nifûsê ( 159000 ) peya japon in.

Ji Honolûlû heta Manîlê merkeza Filîpînê, û di ser girava Wêkê re ( 4797 ) mîl hene.

Emêrîkê ji yên jorin pê ve di Pesîfîkê de girav û wargehên din jî hene : wek Giwam. Conson, Kenton; ji giravên Filîpînê pê ve. Filîpîn bi xwe welatek e.

Ingilîzan jî mistemlikêne mezin di Pesîfîkê de hene. Ewistralye, Nûzêland, Gîna - nû. Ji Sîdneyê, payîteytê Ewistalyayê heta bendera Emêrîkanî, Senfrensîskoyê ( 3658 ) mîl in. Rê di giravên ( Kwîk ) û ( Tahîtî ) re derbas dibe, Ji Sîdneyê heta Hewayê jî ( 4476 ) mîl hene û rê di girava ( Ficî ) re dibore. Ficî ji Sîdneyê ( 1743 ) mîl dûr e.

Nûzêland, ev girav dikeve nîvroyê rohelatê Ewistralyayê û welatekî mezin e.

Gîna — Nû. Ev girav di navbera ingilîz û holendiyan de bi nîvî ye. Rohelatê giravê yê ingilîzan û roavayê wê yê hohendiyan e û ev hirekî Hindistana holendî ye.

Bakurê Bornêo jî yê ingilîzan e.

# HEDÎSÊN
## CENABÊ PÊXEMBER

REHMET Û SILAVA XWEDÊ LÊ BE

419 — Yên ko gava dev û destê xwe dişon navbira didan û tiliyên xwe ji paqij dikin çiqas spehî ne.

420 — Yê ko ji bona dîn û welatê xwe şer dike ji bona parastina wan şevekê hişyar dimîne, xewê li xwe diherimîne ji mirovê ko hezar rojî rojî girtiye û hezar şevi nimêj kiriye çêtir e.

421 — Qedrê jinên mirovên ko di riya dîn û welatê xwe de şer dikin mîna yê diya xwe bigirin.

422 — Mirov qedrê xadim û xulamê xwe bigire jê re xeyr û bereket e.

423 — Mirov divê ji qe ne ve li hefteyê carkê ser û giyanê xwe bişo.

424 — Pênc guneh hene ko bi kefaretê na yin şuştin û ew mîna kufr in :

Mişrikî, bê rê kuştina xelkê, bê rê xwarina malê xelkê, ji şerî bazdan, derew û sund xwarina bi derewan.

425 — Hakimê qenc ew e ko hon ji wî hez bikin ew jî hej we dike û hon bibin arikarê wî ew jî arîkariya we dike, hakimê neqenc ew e ko hon jê dixeyidin û ew jî li we na nêre, hon lanetê lê dikin, ew ji laneta li we dike.

426 — Qencên we ew in ko xwediyê gotina xwe ne.

427 — Çêtirên we ew in ko dilê mirovên di xwe xweş dikin.

428 — Mirovê çêtir ew e ko bi kêrî xelkê tê.

429 — Ziwaca baştir ew e ko xeyd û zehmet tê tu ne be, qelenê wê ne giran be.

430 — Xortên we ên baştir ew in ko mîna mirovên sere giran in û kalên we ên xirab ew in ko pir bûne û li ciwaniyê digerin.

431 — Çaktirên we ew in ko xêrxwaz û xêrkarê jin û zaroyên xwe ne.

432 — Camêr û mêrxas qedrê jina digirin, dilê wan na şkînînin, mirovên pîs û bêqedr jina diêşînin.

433 — Çêtirên we ew in ko ji bona din yayê dev ji axireta xwe û ji bona axiretê dev ji dinya xwe bernadin û ji xelkê re na bin bar.

434 — Yê ko heqê xelkê bi timamî dide serfiraz dibe.

435 — Dêza, xaltiyên we mîna diya we ne, qedrê wan bigirin.

436 — Xelk hemî mirovên Xwedê ne, Xwedê ji nav wan ji mirovê ko ji hemiyan bêtir bi kêrî xelkê tên hez dike.

437 — Her xatirê mirovên xwe ên nesax bipirsin, herin serikî bidin nexweş û nesaxên xwe.

438 — Deynkirin kêmaniyeke mezin e.

439 — Deyn nîrek e, gava Xwedê kêmaniya yekî dixwaze wî nîrî datîne ser stoyê wî.

440 — Destpêka eqildariyê tirsa Xwedê ye.

---

Herçî Holendê vê dewleta kiçik jî di navbera Ewistalye û Hindeçîniyê de giravine gir û hûr hene û ji tevayîya wan re Hindistana holendî dibêjin û Japonye çavên xwe berdaye nemaze vî welatî.

HINDISTANA HOLENDÎ — Belê japonan nemaze çavê xwe berdaye Hindistana holendî. Ji ber ko Hidistana holendî welatekî mezin û dewlemend û nemaze, bi madenên xwe ên têvel hêja ye. Di Hindistana holendî de gelek petrol heye û ev made di Japonyayê de heke yekcar nîn be jî gelek kême.

Hindistana holendî ji nîvgirava Malêzyayê ber bi rohelê heta bakurê Ewistralyayê dirêj dibe. Ev kişwer welatekî giravan e. Mezintirên giravan ji roavê ber bi rohelê Simetre, Cawe, Selebis, Bornêo û birekî Gîna - nû ye. Di vî welatî de 63 milyon peya rûdinin. Herçî miletê serdest yanî Holende nifûsa wî di Ewropayê de 6 milyon û tiştek e.

EWISTRALYE — Ewistralye rast bi rast ne mistemlekeke ingilîzî ye. Jê re dominyon dibêjin. Welat di îşên xwe ên daxilî de bi ser xwe ye lê di îşên xaricî de tabihî taca Ingilterê ye. Girava Ewistralyayê welatekî mezin e, rûyê erdê wî digel Tesmanyayê ( 7704000 ) kîlomêtir çarçike, 15 caran bi qasî Frensê. Xelkê wî tev de ji nijadê englosekson in, û di wextine kevin de ji Ingilterê hatine vê derê. Xelkê cih ê eslî ji ber van revîne û xwe dane nivroyê roavayê giravê, cihine beristan. Mixdarê wan qederê nîv milyon e. Herçî englosesekson 6 milyon û 400 hezar in.

Ewistralye welatekî gelek dewlemend e. Pezê wan zehf e. Di sala 1938an de di vî welatî de 100 milyon pez hatine hejmartin. Zadê wan jî boş e. Genimê Ewistralyayê diçe Emerîkê, Ewropê û welatên rohelatê dûr. Berê, di Ewistralyayê de gelek kanên zêr hebûn. Îro zêr bi tenê di mintiqa Kelgorî de peyda bide. Ji axa vî welatî madenên wek zîv, zeng, sifir, hesin jî dertên.

EVDIREMANÊ ROJKÎ

# MOSKO

## NEPOLÊON, HÎTLER Û STALÎN

Şerê ûris li 22ê Hizêrana sala 1941ê de dest pê kiri bû. Dinyayê digot ko zora ûrisan heke ne di çend heftan de be ji di çend mehan de wê here û ûris dê bêne şkênandin. Bi tenê Stalîn serekê kişwerê bolşêvikan, pê li erdê dida û digot, Rûsye naşkê, heye ko eleman bên heta Moskoyê, dibe ko Moskoyê ji bistinin, lê pê zora me naçe û em serê xwe li Hîtler natewînin. Nepolêon ji hati bû heta Moskoyê, lê serdarê frensizan ê mezin bi zefera xwe şikest û pol û poşman, di bin pûkên berfê de ji cem me vegoriya û Mosko ji ordiwa wî re bû gornistan. Dawiya Hitler ji ev e.

Gotinên Stalîn hêj bi temamî ne çû bin ji seri Hitler ji plana xwe ne bire serî.

Elemanan pênc mehan yanî ji 22ê Hizêranê heta 22ê Çiriya - Paşîn, roja vegirtina Rostovê, ji zeferekê dida pey zefereke din. Lê jê bi şûn de û bi Pîrekanûnê ve stêrka elemanan sernexwîn bû. Elemanên mizefer xwe ji eniya ûris dane paş.

Me got ko Stalîn di destpêka vî şerî de qala Nepolêon kiri bû û goti bû ko Hitler ji wê bibe hevalê wî. Stalîn dibêje ko qederên Hitler û Nepolêon gelek diçin hev. Ma qedera Nepolêon çi bû ?

Di vê babetê de zabitekî elemanî bi navê Klewziç tarixek nivisandiye û tê de qala seferê Moskoyê kiriye. Nepolêon di sala 1812 an de aveti bû ser welatê ûris. Di wê tarîxê de xurtiya Nepolêon gihaşti bû dereceke welê ko dewletên ewropayi tev de keti bûn bin hikimê wî û Nepolêon bû bû hakimê Ewropayê. Nepolêon gava dirêji ûris kir zabitê elemanî Klewziç xwe gihande ordiwa ûris û pê re serê Nepolêon kir. Klewziç di heqê wî şerî de dibêje :

Tabiya Nepolêon şerê brûskin yanî şerê bi lez bû. Nepolêon eskerê xwe li ciheki kom dikir û ji nişkekê ve tavêt ser dijminê xwe. Îşê xwe wer zû pêk tani û diqedand ko firsend ne diket destê dijminê wî ko xwe pêk bîne û li pêşiya wî bisekine. Ji lewre şerên Nepolêon ji çend rojan bêtir ne tajot û di van çend rojan de Nepolêon zora dijminê xwe dibir û ew dişkênand.

Gava Nepolêon avête ser Rûsyayê, ûrisan di pêşiya vê tabiyê de tevdirên jêrîn dîtin û pê ne hiştin ko tabiya Nepolêon here serî. Belê Ûris bêi ko bikevin şerine mezin ji ber ordiwa Nepolêon dikişiyan, di cihên ko ji dest didan rê, pir, zad. avahî û her tiştên ko dikari bûn bi kêrî dijmin bên xerab dikirin. Ji milê din gava ordiwa ûris dikişiya di cihên bisemt de çete ji par re li ordiwa frensizan dixist. Bi vî awayî, ordiwa Nepolêon ya ko ber bi pêş diçû hero qelstir

---

441 — Pir hene bi şev nimêjê dikin û jê karê wan bi tenê kêmxew mayîn e û pir ji hene her bi roji ne û jê karê wan tihn û birçî man e.

442 — Pir hene zikê wan têr e, şikirdarê Xudayê xwe ne û ji mirovên bi roji û birçî çêtir in.

443 — Xwedê li mirovên pakdil û pakziman tê rehmê.

444 — Herê weki mirov silava xelkê lê vedigerîne wiha ji divê cihaba kaxeza wan li wan vegerîne, ev heq û rast e.

445 — Destê ko li ber te vekiriye vala vemegerîne.

446 — Yê ko bertîla dide û yê ko distîne mêvanê dojehê ne.

447 — Yê ko li insan û heywana tê rehmê û bi dilekî xweş û birehm li wan dinêre bila bizane; Xwedê wê wer lê binêre.

448 — Xulqfirehî û dilbirehmî destpêka aqilmendiyê ye.

449 — Yê ko bi dilekî pak ji yekî hez dike bila bizane ko Xwedê ji hej wî dike.

450 — Pir li çûn û hatina xwe lezê me kin hevaltiya we wê bêtir bibe.

451 — Herin goristana, ber serê miriyê xwe, pê axiret tê bîra we.

452 — Zina perişanî ye.

453 — Herin bigerin, laşê we pê rahet û sivik dibe.

454 — Herin bigerin, bi rêke dûr û dirêj herin, bedena we pê rahet û malê we bêtir dibe.

455 — Destê xwe dirêjî can, mal, namûs û şerefa xelkê me kin, ew ji we re heram e û bon pê kafir dibin.

## HEKE WE ŞIKIR KIR EZ ZÊDE DIKIM

« AYETA QURANÊ »

Xwedê li ser şêx, mela, welî û seydan û li ser hemî rêberên dînê islamê ferz kiri ye ko ew spasên xwe ên kûr ji miletê kurdî re pêşkêş bikin da ko Xwidayê gewre ji wan re peyar bit û ji wan razî bit û nîmeta xwe li ser wan zor bikit.

Da bête zanîn ko ew mitîi vê ayetê ne, ayeta ko min li serî gotiye.

Heger yek ji cenabên wan cemerdan ji min re bêjit ji ber çi spasên şêxan û ewliyan ji bo miletê kurdî ferz e? Hercar û herdem ez dikarim cewaba xwe bidim, bi hindik û rindik.

Belê her hosa ye, wek ko ez dibêjim. Çinko miletê kurdî di çaxê saxiya wan de xidmeta şêxan û ewliyan kiriye.

Ew ewliya bi arikariya miletê kurdî gihaştine wê reyê, riya hidayetê û bextiyar bûne. Piştî ko ew wefat bûne kurdan gelek tekiye û mezar li ser tirbetên wan ên spehî çêkirin. Ewan ew xaneqahên wan û mezarên wan hemî bi mehfûr û bi beran xemilandine. Zêr û zîvê xwe helandin, kirine gumbet li ser mezarên wan.

Kurdan gelek malê xwe xerc kir di reya nan û danê wan xaneqan da û heya niho kurd hemî malên xwe serf dikin di reya xêratên di wan comerdan de. Û piştî wefata wan malên xwe didin zaroyên wan ji.

Ew zaroyên ha çi kesb çi kar nînin. Heger ew di dinyayê de bi torinî û bextiyarî dijîn rizqê xwe ji Xwedê û ji miletê kurdî dixwazin.

Herçi şêx û ewliya wan jî hevaliya tu miletê din ne kir ji xeynî miletê kurdan. Çinko tu kesê din ji kurdan pê ve elba wan ne pîvaye. Ji ber vê yekê hemî ewliya û şêxên gewre wek şêx Ebdilqadirê Gêlanî, Şahê Neqşebend, şêx Nûredinê Birîvkanî, şêx Xalidê duçeng, şêx Xalidê Cizerî, Xewsê Hîzanê, şêxê Nêrî, şêx Ehmedê Xanî, şêx Ehmedê Cizerî û Kak-Ehmedê Şêse di nav Kurdistanê de rûdiniştin heya ko tirbêtên di wan ketine nav Kurdistanê.

Van comerdan hevaliya kurdan kir, bi saxiya xwe ew terk ne kirin, bi wefata xwe ji. Çinko wan agehi bi dilê miletê kurd ê paqij û xûna wan a pak ya weko hercar û herdem di laşê wan de dijiviye û ji bona razîkirina dilê wan hebû.

Wan comerdan her bi vî awayî xwe ji kurdan hesêh dikir. Ji van comerdan herçi ne kurd bûn ji îtirafa kurdî li ser xwe dikir.

Çinko ew bi enaniya miletê kurdan bi wan re hisiya bûn, dilê wan her wext bi kurdan re saxbû. Kurd jî di çaxa wan de bextiyar bûn, zengîn bûn, malê wan pir bû û tebietsilûk û ji teriqetên wan bûn. Heya niho jî kurd bi vî awayî ligel zariwên wan mixlis mane.

---

diket û ordiwa ûris ya ko xwe dida paş, ji alîkî şer dikir û ji aliyê din xwe pêk tanî.

Nepolêon di dilê xwe de digot ko bi standina Moskoyê mesele wê safî bibe û ûris aşiyê yanî silhê wê bixwazin. Ji Nepolêon ve gava ordiwa wî bigehişta Moskoyê ewê ji xwe re cih û qişleyên germ û her texlît zad û zexire wê peyda bikira û tê de wê bikariya bihna xwe bide.

Belê Nepolêon Mosko zemt kir, lê hêviya wî pûç derket. Ûrisan beriya ko terka payîtexê xwe bidin ew şewitandi bûn û tistên ko agir bi wan ne diket ew jî xerab kiri bûn. Nepolêon û ordiwa wî ne keti bûn bajarekî, lê keti bûn xerabezarekê. Ji xwe li Moskoyê ji feqîr û belengazan pê ve kes ne ma bû.

Nepolêon di Kremlînê, di qesra çarên ûris de li hêviya şertên aşiyê bû; lê ew ne dihatin. Herçi çar yanî imperatorê ûrisan û fermandarên wî ordiwa ûris ji nû ve pêk ve tanîn û li ber fikan desekinîn. Wekê Nepolêon bêgav ma û ji Moskoyê kişiya ûrisan da pey ordiwa wî û ew gelek êşand.

Gava Nepolêon ji Moskoyê vedigeriya hemî Ewrope di bin hikmê wî de bû ji Ingilterê pê ve. Ingilterê xwe ji bo şerê Nepolêon kar dikir. Piştî sê salan Ingilterê digel hevalbendên xwe di Vetêrloyê de zora Nepolêon bir.

Tiştê ko li Nepolêon qewimî ev e. Nepolêon ket Moskoyê. Herçi Hitler nîzingî li Moskoyê kir û bêî ko bikev-ê ji ber kişiya û ûrisan da pey. Ayende wê ji me re bide zanîn heta Biharê ûris elmanan wê vegerînin heta kû derê.

HESENÊ MISTÊ

Eger vî çaxî kurd yek ji zariwên şêxan û ewliyan dibînin ko kesk li serî ye, hema dibezin, diçin tewafa destê wî û her tiştê ko ew ji malê wan daxwaz dikin; ew bi wan didin, bi niyeta dilê xwe ê paqij û xwîna xwe a pak.

Heger kesek qencî ligel yekî bikit divêt ew qenciya wî ji bîr nekit, eger qencî li wî ne vegerit, şûna wê çi xerabiyê nekit.

Ez yek ji zariwên wan ewliyan im. Ji wextî ez hatime dinyayê heta vî çaxî ez rizqê xwe û toriniya xwe û bextiyariya xwe ji miletê kurdî dixwazim û her hosa; kalikê min şêx Nûredîn û kalikê kalikê wî jî rizqê xwe û yê xaneqa xwe û sifra mihvanên xwe û şîlana dîwanxana xwe ji miletê kurd xwestine, û ji miletê kurd birine.

Belê vî çaxî em zariwên şêxên vî zemanî bi xwe perişan bûne. Em ji bavên xwe perişantir in; destê me kurt bûye; toriniya me winda bûye.

Ma jê re sebeb çi ? Sebeb ev e, çaxê kalikên me torin û bextiyar bûn wî çaxî li nav kurdan yekitî hebû, kurd serbixwe bûn, her bextiyar û torin bûn. Vî çaxî kurd perîşan bûne, em jî bi perîşaniya wan perîşan in.

Heger mirov ji rezekî tirih xwarî bit û salekê ew rez tirih ne da, nabit ko mirov pişta xwe bidit wî. Divêt mirov wî xweyî bikit heta saleke din.

Gelek em zariwên şêx û ewliyan ji Xwedê bixwazin û jê hêvîdar bibin û ji kalikên di xwe daxwaz bikin ko ew di xwestina yekîtî, bextiyarî û toriniya miletê kurdî de hemî himetên di xwe serf bikin da ko miletê kurd ji bindestiya dijminên xwe derkevit û bibit serbixwe.

Eger em bi mayîna terîqên xwe û silûkên xwe bawermend in û dixwazin bi rêsika kalikên xwe biçin divêt her bi vî awayî ji Xwedê xwe bextiyarî û biserxwebûna kurdan bixwazin.

Ez xatircem im, ji hemî ewliya û şêxên kurdan yên vî zemanî wek şêx Brahîm Ĥeqî Şahê Basiret, şêx Ehmedê Xiznê qutbê rebanî û şêx Ebdilqudûsê zilî û şêxên kurdên Iraqê û hemî şêxên kurdan ko ew hemî çar qunûtek zêde li ser nivêja xwe bikin û ji bona serxwebûna kurdan ji rebê xwe teka û hêviyê bikin. Çinko rêsikên dîn û diyanetê ji miletê kurd pê ve bi tu kesî re ne maye û di nav miletan de ji miletê kurdî hêjatir û sezatir nîne.

Ez xwe, bi tenê bi miletê kurd re torin û bextiyar dibînim û ji Xwedê mezin serfirazî û serxwebûna wî daxwaz dikim. Her hijî miletê kurd.

ŞÊX ABID
Jî famîlya şêx Nûredînê Birîvkanî
Amûde : 10-12-1941

# REWŞA DINYAYÊ

ŞERÊ LÎBYAYÊ — Di hejmara 37an de me goti bû ko genêral Römel di peşberê dijmineki xurt û serdest de eskerên xwe li çiyayên ko dikevin nivrorohelatê Dernê diheşidîne û dike tê de li ber xwe bide. Römel welê ji kir, lê di wan çiyan de jî gelek ne ma, ji ber ko ingilîzan da pey û dirêjî eskerên Römel kir. Römel bi ingilîzan re ne kete şerekî mezin û ji vê derê jî kişiya û terka Bîngaziyê ji da. Li 25ê Kanûna pêşîn ingilîz ketin Bingaziyê. Wer dixuye ko Römel dixwaze bi eskerên xwe ên mayîn ve xwe bide Trablisxerbê. Ji pêşiya vê mehê ve Römel di Egedabyayê de ye. Egedabye li ser tixûbên Trablisxerbê ye û par eskerên general Wêvel gihaşti bûn heta vê derê.

Ordiwa Römel û eskerên talyanî gava ji ber ingilîzan dikişiyan di Selûm, Berdiye û Ĥelfayayê de qewetin hişti bûn û ew qewet di wan deran de asê bû bûn. Wan qewetan bireki ordiwa ingilîzî bi xwe re dihişt.

Bi vî awayî û bi wan qewetan birekî peravên Lîbyayê jî di destê ordiwên mihwerê de dima. Qewetên miĥwerê dixwest herwekî ingilîzan par di Tobriqê de kiri bû di Berdiyê de di erdê dijmin de bimînin û li riyên menzila dijmin xin û bi vî awayî bi qewetine hindik işine mezin bibînin.

Belê Tobrik heft mehan di bin mihasara eleman û talyanan de ma û ne ket. Ji ber ko di behra spî de serdestî bi ingilîzan re ye. Ingilîzan eskerên Tobriqê di riya behrê re bi xwedî dikirin.

Lê eleman û talyanan nikarî bû asêgeha Berdiyê mîna ingilîzan di riya behrê re bi xwedî bikin û jê re zad, çek û cebir-

xanê bişînin. Ingilîzan jî bê etlahî li Berdiyê dişıdand. Dawiyê li 2ê vê mehê ingilîzan Berdiye stand û eskerên tê de hêsir bûn. Herçî Selûm e, li 6ê mehê qewetên mihwerê jê kişiyan û ingilîz ketin ê.

Pişti Selûmê li Libyayê di destê mihwerê de bi tenê Helfaye ma bû. Li 17ê vê Kanûnê Helfaye jî teslîm bû. Helfayê ehemiyeteke mezin hebû.Helfaye li ser riya mezin,riya ko ji tixubên Misrê diçe tixûbên Trablisxerbê ye. Ji lewre hetanî ko qewetên elemanî û talyanî tê de bûn qefleyên ingilîzî di nivroyê wê û di çolê re diçûn û dibatin. Radyowa Londrê dibêje ko di Helfayê de ji xwe zad ne ma bû; newaze av. Hêsîrên ko ketine destên ingilîzan hew karî bûn ji piyan bisekinin.

Bi vî awayî ingilîzan Libye ji dijmin paqij kir û êdî bi rabeti ew dikarin xwe bidin ordiwa Römel. Wer dixuye ko giraniya ordiwa Römel berê xwe daye Trablisxerbê û dikişe. Bi tenê dimdar di Egêdabyayê de ye, şerê pêşadarên ingilîzan dike û giraniya ordiwê dihemîne.

ŞERÊ ÛRIS — Herwekî me di hejmara borî de goti bû elemanên ko gehişti bûn heta ber deriyên Moskoyê bi şûn de vedigerin. Û wer dixuye ko Hitler û fermanderên wî êdî bi hev nakin û tiştek di navbera wan de qewimiye. Hitler li 19ê Kanûna pêşîn beyanamêk belav kir û pê da zanîn ko destê serfermandarê ordiwa elemanî merêşal von Brewxîç ji kar hate kişandin û Hitler bi xwe ketiye şûna wî û bûye serfermandarê ordiwa awe.

Ji zarê beyanamê xuya dikir ko Hitler û Brewxîç li ser sefera ûris, li ser domkirina wî di wextê Zivistanê de jî ne yek bûn. Dîsa li gora zarê beyanamê ji Hitler bêtir Brewxîç dil kiriye ko rexma Zivistanê ordiwa elemanî direjî Moskoyê bike. Herwekî ew êriş çêbû, lê ne çû serî.

Îro plana elemanan ev e: Heta Biharê di midafehê de mayîn û di vê navê de xwe ji bo êrîşa Biharê kar kirin, û çiqas ji wan hat ewçend di nîzingî armancên xwe de mayîn û jê ne dûrketin.

Herçî plana ûrisan ev plan divêt xerabkirina plana elemanan bit. Ji lewre ûris di her derê de direjî xetên elemanî dikin û zorê didin wan û di hin cihan de elemanan bi şûn de vedigerînin. Ûrisan di hin deran de nemaze di dora Moskoyê de ji 150 kilomêtirî bêtir pêş ve çûne û eleman bi şûn de vegerandine û bajarên Kelinin, Oskoyî, Kelûge, Nêrokominsk, Pilof, Folkof, Kozelek, Tafok û Ogorski zemt kirine.

Di qada nîvro de êrîşa ûrisan piştî standina Rostovê di pêşiya Tagendrovê de sekinî bû. Ûris di vê qadê de, lê di dereke dî ve pêş ve çûne, xwe zer kirine nîvgirava Kirimê. Bi vapor û balafiran avêtine ser bajarên Kerç û Fêodosyayê û li 30 û 31ê Kanûna borî ev her du bajar zemt kirine. Kerç li ser avtenga behra Ezovê ye, û dikeve aliyê avlengê yê roavê. Ji xwe aliyê rohelê di destê ûrisan de bû. Bi vî awayî avteng bi temamî û ji nû ve ketiye destê ûrisan.

Di vê Kanûnê de jî êrîşa ûrisan pêş ve çû û li 2ê mehê ûrisan xeçereya rêhesinî Novikirşî vegirt û pê elemanên ko li Novogrodê ne û yên ko di dora Lêningradê de ne ji hev qut bûn. Li 3ê mehê ûrisan Maloyerosloviç zemt kir. Bi ketina Maloyerosloviçê Mojayesk ji diket bin xeterê. Li 4ê mehê ûrisan bajarê Voroskê ji xist destê xwe û pê 40 kîlomêtir nizingî li Mojayeskê kir. Li 8ê mehê ûris gihaştine heta bajarê Mişofskê; 130 Kîlomêtir nîvroyê Moskoyê û 38 Kîlomêtir roavayê Kelûgayê.

Ûris zorê didin Fenlandiyayê jî. Ûrisan di Kerêliyê de hicûmî fenlandiyan kiri be jî fenlandî li pêşiya wan sekinîn û ne şikestin.

Li 10 û 11ê mehê ûrisan di qada navîn de Mosalek û Lodinovo zemt kirine. Mosalek dikeve 140 kîlomêtir roavayê Smolenskê. Herçî Lodinovo 70 kîlomêtir bakurê Briyanskê ye.

Li 16ê mehê ûrisan esker daxiste nîvroyê Sevestopolê û bajarê Kelavayê zemt kir. Kelava 16 Kîlomêtir dûrî Sevestepolê ye. Herçî ûrisên ko di Sevestopolê de ne niho ew ji dikin xeta mihaserê bişkênînin û xwe bigebînin ûrisên ko daketine erdê Kirimê.

Li 19ê mehê ûris ketine Mojayeskê. Herçî eleman in, wan ji li 20ê mehê di Kirimê de bajarê Têodesyayê bi şûn de vegerandiye.

ŞERÊ PESÎFÎKÊ — Di şerê Pesîfikê de nişkegaviya japonan dom dike û japon di hemî qadan de serdest in. Lê Emêrîke xwe pêk ditîne û dewletên gir û hûr dide dora xwe.

Li 22ê Kanûna borî serekwezîrê Ingilterê Mister Çorçil çû Weşîngtonê. Bi Mister

# KHARABO

La chanson de Kharâho a été recueillie chez les Omeris, tribu de vignerons fixée près de Mardine; elle présente de ce fait quelques particularités dialectales que l'on reconnaîtra aisément en parcourant le texte kurde ( go pour ko; mi pour min, etc. ). Le poème est l'oeuvre d'une jeune femme abandonnée par son fiancé, qui a quitté le village pour aller se marier ailleurs. Elle a dû, de son côté, épouser un de ses cousins. Elle évoque le souvenir de ses rendez-vous avec l'infidèle qu'elle aime et déteste tout à la fois. Elle le maudit, mais veut être seulé à le faire, aussi couvre-t-elle de ses imprécations quiconque se permettrait d'adresser des reproches à son Kharâho. Les sixième et septième strophes contiennent des formules de malédiction très intéressantes pour l'étude de la magie populaire kurde.

TAWÛSPARÊZ.

Çorçil re hin fermandar û pispor ji hebûn. Mirovdewletên ingilîzi û emêrîkani gihane hev û li ser awayên hevkariyê xeber dan. Li Weşingtonê konferansek hate danin. 26 dewletên ewropayi û emêrikani ketine wê konferansê. Mister Çorçil qederê mehekê li Weşingtonê ma û li 17ê vê Kanûnê vegeriya Londrê.

Dîsan li 16ê vê mehê civîneke din li Riyodejanêroyê de çêbû. Herçi dewletên Emêrika navîn û nîvro ne ketine vê civînê.

Herçi şer, japonan li 25ê Kanûna borî Honkong zemt kiriye. Li 2ê vê Kanûnê japon ketine Menîlayê, merkeza giravên Filipînê. Lê hêj Filîpin bi temami venegirtine; sêr tê de dom dike.

Japon ji ber derê betir zora xwe didin Melêzyayê û dikin xwe bigehînin Sengeporê. Ji aliyê din japon û ingilîz xwe di Bîrmanyayê de jî tev didin. Çenkeyşek serekê Çîna nevegirtî eskerên çînî şandine Bîrmanyayê.

Lê şer nemaze di nîvgirava Melêzyayê de germ e. Wer dixuye ko japon di vê qadê de bi temami serdest in û ingilîz xwe didin paş û ber bi Sengeporê dikişin. Japon ji alikî di bejê re tên ji aliyê din esker derdixînin her du milên nîvgiravê û bi vî awayî dikevin paş ordiwa ingilîzî. Û balafirên japonî ji bê etlahî Sergeporê didin ber bimbeyên xwe.

Li 19ê mehê japonan qederê 70 kilomêtir nêzingî li Sengeporê kiri bûn û riya avtenga Meleqê biri bûn. Li 20ê mehê radyowe Londrê dida zanîn ko hin balafirgehên Melêzyayê ketine destê japonan û japonan ji nû ve esker derêxistine Bêtimarê 90 mil bakurê Sengeporê.

Ingilîz bi xwe dibêjin ko Sengepor kilîta bebran di bin xeterê de ye.

Şam 20 Kanûna Paşîn 1942. NÊREVAN

Xerabo, Xerabo, weleh û bileh, tu xerab î.
Tu bi galigalê, bi gotinê çênabi.
Malê te pir e, ji canê te re edabo !
Qama te kin e, hemberî taximê memikê mi nabo !
Şevê kanûna dirêj in, tu ji ber serê min ranabo !
Belki debara te dibe, ehûra mi di mala bavê mi de nabo !

Xerabo, weleh, tu xerab î,
Tuê ji dinyaê, ji alemê xerabtir î.
Tu ji koma pismamê mi çêtir î.
Serê memikê mi, rebena Xwedê, mînayî tiriyê Çêlikê Eliyê Remo, di çax û benga xwe de dikemilî.
Serê memikê mi, rebena Xwedê mina Qesrê Pirota, serê Mihela Meşkina avakiri.

Xerabo, dino, havin e, xweş havin e.
Nanê cehin e û dewê tirşîn e.
Serax û binraxa min û xelkê delal ebakî şalîn e.
Heçi derdê dila ne dî be, bila nebîne !
Tu rabe, ji mi re gwizaneke berbera bîne.
Ezê serê memikê xwe hiçipilînim, ji kala re bikim taştê, ji xorta re bikim feravîne.
Bazê dilê min rojika rojiya sê meha digire, bila êvarê pê fitara xwe bişkênine.

Xerabo, xerabê dînê, te mika xwe daye bi bizinê,
Te gula xwe daye bi sosinê.
Te berê xwe daye qetlê û sêpaê zînê.
Ez û xerabê bi tenê şevê nivê şeva li zikaka biniya mala li hev rûniştin,
Me gilikê xwe pev kirin û gazindê xwe dihiştin,
Kundê şkêra, wawîkê ber devê çema li halê min û bejna zirav diponiştin,

Mirikê gorê di mezela, ê go îsal hezar û pênc sed sal mirî bûn, kefenê xwe li cemcûmê serê xwe gerandin, li ser qebrê xwe rûniştin, Li halê min û bejna zirav diponiştin.

Ez bi te re dost bûm, tu bi mi re dijmin bûyî, Tu li paş xanîka li min dikelistî, te derbek bi tifingê berda mi, ez dikuştim.

Şevê nîvê şeva, te bi destê tola jina xwe girt, û ez li ber diwara dihiştim.

Xerabo, dîno, mi bihîstî tu zewicî, te ji xwe re yek dixwestî.

Heke ji mi çêtir be, bila li te helal be, li wî canî, ya na, ezê tu nifira li te nakim, tu dûridest î.

Xwedê teala bike, Rebî, goştê canê te bihele, li hewa bimine komek hestî,

Tu kwîr bibî, têkevî ber vî destî.

Xerabo, dîno, tu zewicî, te yek anî,
Hege ji min çêtir be, bila li te helal be, li wî canî.
Ya na, Xwedê teala bike, Rebî, li canê te keve derdek, tu nebinî tu dermanî.
Ezê serê sibehê rabim, bi destê te bigirim, te bikişînim wî cebanî.

Xerabo, Xerabo! Xwedê teala bike, Rebî, heçî ji ×erabê min re bêje: "Tu xerabo",
Bila karîn û warîna zarokê nêr tu carê di mala wan de nabo!
Bila sed olçek genimê sor li binê beriya Mêrdînê biçîne, li şwînê bila qerezîwana reş rabo!
Êmayî, bila kuliyê par û pêrar lê rabo!
Bila salekê bîne ser bêndere, gêre bike, û bidêre, ew ji jê re bi ka bo,
Kulmek zadê ji wan re safî nabo!

Heçî ji Xerabê mi re bêje: "Tu baş î, tu pir qenc î" Xwedê teala bike, Rebî, kulmek garisê li pişta mala biçîne,
Li şwînê sed olçek genimê sor hiline;
Bi ofara binî qîza şêxkî, axakî ji xwe re bîne;
Zikata malê vê salê bide min û bazê dila, emê pê daweta xwe li dar xînin.
Min dî bazê dila barê xwe bar dike, berê xwe dide aşê mala Hacî Şemdîn e.

Tu li wê newalê timam bigere, tu li heft seriya bigere, tu çavkî di wan de nabîne.
Mi dî mirata çapê li arvanê bazê dilê min dixîne,
Heft çap û nîva ji arvanê bazê dilê mi hiltine,
Daweta min û Xerabê bi tenê sala vê salê nêv cî li dar dinîne.

Xerabê mi xeyidî ji gundiya, ji maliya.
Mi dî da ser rêka Omeriya,
Minê digo: "Ezê rabim, ban kim heval û hogir û hemşeriya,
Bila herin xelkê delal vegerînin bi kêf û eşq û laqirdiya
Bila Xwedê teala biqedîne miradê miradxwaza û dilketiya,
Bila miradê min û Xerabê mi bimîne heya koçerê me vegerin ji deşta Mûşê, rûnin akinciya.

Xerabo, dîno, xerabê xelkê,
Te bejin ziravo, bi terha benikê,
Dilkê min û bejna zirav di hev hebû çi kula gó ketiye mala xelkê.
Xerabo, dîno, mala bavê keleşgewra mi li wê çivê, li wê ewcê, li wê zikakê, li wê fitlekê
Te meşqazê, meşqetikê, meşordekê,
Heçiyê xortê go bi çavê xwe dî û bi dilê xwe zewicî, ewê sê roj û sê şevê xwe kuştine ji dinyaê, ji qoce felekê.

Xerabo, dino bila li te be, li wî dilî,
Bila li mala hezar û heft sed bavê te be, li wê sewdanê, li wî aqilî,
Çewa te dev ji mi, kihêla serê tewla berda, tuê li bergîla şixulê Rişmiliya û Qibaliya dihesilî.
Mi ji te re ne go: "Di meha biharê, bergîla li şwîna kihêla metewilî!"
Li xûşka mezin binêr, dû re xûşka biçûk ji xwe re werî.
Lawiko, dîno, ezê çi bikim? Sala vê salê, ez bi mêr im, tu bi jin î.
Kul û kederê te gelek in, şak berdane ser vî dilî.
Kul û kedera ji bîra nakim, heya axê meze lan, kêlê di keviri.
Kul û kederê te pir bûne, tucar dernakevin ji vî dilî.

Xelkê digo : " Keleşgewra te esmer e û genimçwin e. "
Bi xelkê tehl e û bi nevsa mi şêrîn e.
Tu rabe, serê xwe di kulek û şibakê qesrê re biderxîne,
Bila sira baê Qerejdaxê li ser şêbiskê te ê şê xîne,
Bi ser henarkê rûkê rastê te vegerîne.
Ez dikim herim welatê xerib û xurbetê, tu kanî ramisanekê bi mi de, ji boxaza qirikê, ji xanûmanê ger enê,
Bila kederê ramisanê te keçikê li welatê xerîb û xurbetê di dilê mi de nemîne.
Wexta Ezraîl dakeve rûhê mi bistîne,
Wê gavê, bila diwanzde mikweta zêdî heqê mi li mi xîne,
Bila heqê ramîsanê keleşgewra mi ji mi hilînel

Xerabo, Xerabo, Xerabo ! Wey li minê, wey li minê, wey li minê !
Çewa îro hatiye cewaba nexêr e,
Ji mi keçikê re.
Digo : " Delalê dilê te li welatê xerîb û xurbetê nexweş e, nexweşekî li ber mirinê.
Ezê ji komê pismama ne wêrim herim sereki bidimê.
Xwezî ji xêra Xwedê re, ezê bistekekê li teniştа Xerabê xwe rûniştama, meyê li hevûdu helal bikira heqê ramisana, malîfeta derdê dilketinê !
Gelî gundî û malino, car û cirano, hûnê bi qedrê Xwedê kin, mala Xerabê mi ziyareteke pir evzel e, hûnê bi destê min bigirin û mi bibinê.

Çi darika di bexçê mala bavê mi de bû, ji gula, ji beybûna xemilandî,
Xerabê mi rahişti hejkî, lêxisti, timam diweşandî.
Bê lome be, çewa dostikek mero gelik î bedew hebe,
Li çiayki mîna çiyayê Omeriya be,
Mero dev jê berde, dil pêkeve erebekê, li binê beriya jêrî, û lêvdeqandî !

Xerabo, wile, tu xerabo,
Malê te pir e, ji canê te re edabo !
Tu bi şêxkî diwazde elmî bo,
Sed werdê te di bêrîka mi de bo
Qenyatiya dilê mi bi te nabo !

## TRADUCTION

Kharâbo, Kharâbo, tu es vraiment méchant.
Tù ne te laisses pas toucher par mes paroles.
Tes biens sont nombreux, puissent - ils causer ton tourment!
Tu es petit, tu n'arrives même pas à la parure d'argent qui couvre mes seins.
Les nuits de Décembre et de Janvier sont longues, ne quitte pas mon chevet.
Peut - être parviens - tu encore à vivre. Chez mon père, je ne le puis!

Kharâbo, tu es vraiment méchant.
Tu es pire que ce monde ( maudit ),
Et pourtant, tu vaux mieux que mes cousins !
La pointe de mes seins —pauvrette de Dieu !— est pareille aux raisins de Tchéleké Aliyé Ramo (1), lorsqu'ils sont bien mûrs sur le cep.
La pointe de mes seins—pauvrette de Dieu !— est pareille au Château des Moines, qui domine Mehela Mechkina. (2)

Kharâbo, insensé, c'est l'été, le bel été !
Nous avons du pain d'orge, du petit-lait aigre;
Nous avons, mon bien-aimé et moi, pour couverture et pour dessous de lit (3), un manteau de soie.
Puisse qui ne connait le mal des coeurs, l'ignorer pour toujours :
Va me chercher un rasoir de barbier,
Je couperai la pointe de mes seins, j'en ferai le déjeuner des vieillards, le goûter des garçons.
Le faucon de mon coeur observe trois mois d'abstinence en plus de Ramadan, qu'il en mange le soir, pour rompre son jeûne!

Kharâbo, Kharâbo insensé, tu as échangé ta brebis pour une chèvre,
Ta rose pour un lis. (4)
Tu te précipites vers la mort et le gibet.
Avec mon Kharâbo solitaire, à minuit, j'étais assise dans la rue, au pied des maisons;
Nous échangions nos plaintes, laissant tout reproche.
Les chouettes, perchées sur les pierrailles, les chacals au bord des rivières baissaient tristement la tête, pleins de pitié pour nous.

Les morts du tombeau, enterrés depuis quinze cents ans avaient enroulé leurs linceuls autour de leur crâne, et s'étaient accroupis sur leurs sépulcres.
Ils baissaient tristement la tête, pleins de pitié pour moi et pour mon ami svelte.
Je t'aimais, tu me détestais comme un ennemi.
Tu m'as guettée, caché derrière les maisons, pour me lâcher un coup de fusil. Tu m'as tuée.
Puis, prenant ta maudite femme par la main, tu m'as laissée seule, en pleine nuit.

Kharâbo, insensé, j'ai appris que tu t'es marié, que tu as demandé la main d'une fille.
Si elle vaut mieux que moi, que Dieu consente à votre union. Sinon, je ne te maudirai pas davantage : tu m'es inaccessible !
Mais, fasse le Seigneur que ton corps se dissolve, et qu'il ne reste de toi qu'un tas d'ossements exposés en plein vent !
Puisse-tu devenir aveugle et tomber à ma merci !

Kharâbo, insensé, j'ai appris que tu t'es marié, que tu as épousé une fille.
Si elle vautmieux que moi, que Dieu consente à votre union !
Sinon, fasse le Seigneur que ton corps soit atteint d'un mal sans remède !
Je me lèverai de bon matin pour te trainer par la main jusqu'au cimetière.

Qui dira à mon Kharâbo : " Tu es méchant !",
Fasse le Seigneur que jamais sa maison ne retentisse aux cris des enfants mâles;
Qu'il sème cent oltchaks (5) de blé rouge dans la basse plaine de Mardine, qu'il n'en pousse que de l'ivraie,
Et que toutes les sauterelles d'antan s'attaquent au reste;
Qu'il mette durant un an sa récolte sur l'aire, qu'il batte, qu'il vanne, et n'en tire que de la paille,
Sans une poignée de grain propre !

Mais, qui dira à mon Kharâbo : " Tu es bon. tu es brave ",
Fasse le Seigneur qu'il sème une poignée de mais derrière sa maison,
Et qu'il en pousse cent oltchaks de blé rouge;
Que les grains restant sur l'aire lui suffisent pour demander en mariage la fille d'un chaykh ou d'un agha,
Et qu'il me donne, ainsi qu'au faucon de mon coeur, l'aumône de l'année (6)! nous en aurons assez pour notre noce.

J'ai vu le faucon de mon coeur charger ses bêtes et aller au moulin des Hadji Chamdin.
— Explore la vallée d'un bout à l'autre, avec ses sept sommets, tu n'y trouveras pas une seule source (7)—
J'ai vu le meunier mesurer la farine du faucon de mon cœur
Et en prélever sept boisseaux et demi (8).
Mes noces avec Kharâbo le solitaire en resteront là pour cette année.

Mon Kharâbo s'est brouillé avec les gens du village et avec ses proches.
Je l'ai vu s'en aller par le chemin des Omeris.
Je me suis dit : " Je vais appeler les amis et les voisins,
Qu'ils partent chercher mon bien-aimé à grand liesse.
Que Dieu exauce les voeux des amoureux,
Même si la réalisation des miens et de ceux de mon Kharâbo doit attendre jusqu'au moment où nos nomades reviendront de la plaine de Mouch, pour se fixer au sol (9).

Kharâbo insensé et cruel,
Kharâbo à la taille fine comme une jeune pousse de lentisque,
Mon coeur et celui de mon svelte bien-aimé endurent à eux deux toutes les peines du monde.
— La maison du père de ma belle est au tournant de cette ruelle.
O toi dont la démarche est grâcieuse comme celle des oies et des canards sauvages, et des perdrix du désert,
Quiconque se marie selon le désir de son cœur, après avoir contemplé celle qu'il aime, soustrait trois jours et trois nuits au monde, au destin.

— Kharâbo, insensé, Malheur à toi, malheur à ton coeur (10);

Malheur à la famille de tes dix-sept cente ancêtres, malheur à ton amour, malheur à ta raison !
Moi, la jument de race que l'on attache au fond de l'écurie, tu m'as délaissée pour cette rosse des Rechmela et des Qebaliya (11).
Ne t'avais-je pas dit qu'au printemps, il ne faut pas attacher les bidets à la place des chevaux pur sang ?
Regarde l'ainée, épouse ensuite la cadette (12).
Fol ami, que faire ? Cette année, j'ai un mari, et toi, une femme !
Tu me causes des peines nombreuses, qui me déchirent le coeur.
Je ne pourrai les oublier, jusqu'au ( jour où je dormirai dans ) la terre du tombeau, ( sous) la stèle de pierre.

— Les gens disaient : " Ta belle est brune et noiraude. "
Amère aux autres, elle m'est douce.
Mets la tête à la lucarne du château,
Laisse la brise du Harabdagh frôler tes boucles blondes et les rabattre sur ta joue droite.
Je vais partir au loin, laisse-moi prendre un baiser au défilé de ta gorge, à ton cou pareil à celui des femmes de ta famille !
O jeune fille, fais qu'une fois en terre étrangère, je ne garde pas au cœur le regret de n'avoir pu t'embrasser.
Et, quand Azrail descendra du ciel, pour chercher mon âme,
Qu'il me donne douze coups de maillet en sus de mon compte (13),
Pour me faire payer le baiser de ma belle !

— Kharâbo, Kharâbo, Kharâbo, malheur à moi, malheur à moi, malheur à moi !
La mauvaise nouvelle vient de me parvenir,
Pauvre fille !
On m'a dit : " Celui que ton cœur aime est malade au loin, malade à mourir.
Je n'ose aller le voir par crainte de mes cousins.
Que ne puis-je, par la grâce de Dieu m'asseoir un instant auprès de mon Kharâbo.
Nous nous acquitterions de notre dû de baisers, ce remède au mal d'amour !
Villageois, amis, voisins, pour l'amour de Dieu, la maison de mon Kharâbo est un sanctuaire très saint, il faut me prendre par la main et m'y conduire.

Les arbres du jardin de mon père étaient tous parés de fleurs et de boutons,
Mon Kharâbo a pris une perche et les a gaulés.
Je ne lui reproche rien, puisque, quand on a une si belle amie,
Dans une montagne comme celle des Omeris,
On la laisse pour s'amouracher d'une bédouine de la basse plaine, aux lèvres tatouées !

Kharâbo, tu es vraiment méchant,
Tu possèdes des biens nombreux, puissent-ils causer ton tourment !
Si tu étais un chaykh instruit des douze sciences,
Et si je portais dans ma poche cent de tes charmes,
Mon coeur n'aurait pas davantage confiance en toi.

## NOTES

(1) Village omeri.

(2) Quartier de Mardine..

(3) Binrax : couverture ou tapis que l'on place entre le sol et le matelas sur lequel on dort.

(4) C'est à dire : tu m'as abandonnée pour une autre qui ne me vaut pas.

(5) Un oltchak vaut environ 60 kgs.

(6) L'aumone rituelle que les Musulmans doivent verser chaque année ( zekat ).

(7) Ce vers doit sans doute s'interpréter comme une malédiction lancée contre le meunier : son moulin ne peut fonctionner sans eau.

(8) Les meuniers kurdes sont payés en nature.

(9) Les Omeris sont de très anciens sédentaires, aussi est-il douteux que les nomades auxquels il est fait allusion ici fassent partie du groupement. Il s'agit, plus vraisemblablement de fractions étrangères venant hiverner sur le territoire de la tribu.

(10) C'est à dire : malheur à toi qui en as aimé une autre.

(11) Les Rechmela et les Qebaliya sont les habitants de deux villages des environs de Mardine. Ils sont assez méprisés par leurs voisins.

(12) Kharâbo n'est sans doute pas content de son mariage : il aurait dû suivre le conseil donné par ce proverbe, et bien examiner la soeur aînée, pour voir ce que deviendrait plus tard la cadette, qu'il se proposait d'épouser.

(13) Suivant la croyance musulmane, l'ange qui descend au tombeau chercher l'âme du defunt frappe ce dernier pour lui faire avouer ses fautes.

# Kitêbxana Hawarê

Hejmar:

1 – Rêzana Elfabiya Kurdî C. A. Bedir-Xan.
2 — Rupelnine Elfabê C A. Bedir-Xan.
3 — Dilê Kurên Min Dr. K. A. Bedir-Xan.
4 — Bîyişa Pêxember. Bi Kurdiya dumilî, bi dibaca C. A. Bedir-Xan
5 — Nivêjên Êzediyan bi dibaca C. A. Bedir-Xan
6 — Mektûb ji Mistefa Kemal paşê re
7 C. A. Bedir-Xan
1 — Mesela Kurdistanê Bazil Nikitîn
8 — Ji mesela Kurdistanê C. A. Bedir-Xan
9 — Elfabeya Kurdî Dr. K. A. Bedir-Xan
10— Xwendina Kurdî Dr. K. A. Bedir-Xan
11— Elfabeya min Dr. K. A. Bedir-Xan
12— Dersên Şerietê Dr. K. A. Bedir-Xan
13— Çarînên Xeyam Dr. K. A Bedir-Xan
14— Proverbes Kurdes. Medhelokên Kurdî Lucy Paule Margueritte û Emîr. K. A. Bedir-Xan Paris - 1937
15— Le roi du Kurdistan. Qralê Kurdistanê. Emir K. A. Bedir-Xan. û Adolphe de Falgerolle. Paris - 1937
6— Der Adler von Kurdistan. Eyloyê Kurdistanê. Prinz K. A Bedir-Xan û Herbert Örtel Berlin - 1937
17— Der Schnee Des Lichtes. Berfa Ronahiyê Şihrên Kurdî Prinz. K. A. Bedir-Xan û Dr. Curt Wunderlich Berlin - 1937

---

# Kiryariya Hawarê

| | | |
|---|---|---|
| Salî | 500 | Qirûşên Sûrî |
| Şeşmehî | 300 | Qirûşên Sûrî |
| Sêmehî | 200 | Qirûşên Sûrî |

Xwedî û gerînendeyê berpirsiyar: Mîr Celadet Alî Bedir-Xan. Şam—Sûriye
Directeur Propriétaire: Emir Djéladet Aali Bedir-Khan. Damas—Syrie

SAL 10
HEJMAR 39
YEKŞEMB
15 ŞIBAT 1942

ANNEE 10
NUMERO 39
DIMANCHE
15 FEVRIER 1942

# HAWAR

## KOVARA KURDÎ ★ REVUE KURDE

TEXISTIYÊN VÊ HEJMARÊ



ŞAM—1942
ÇAPXANA SEBATÊ

SAL 10
HEJMAR 39

YEKŞEMB
15 ŞIBAT 1942

# HAWAR

ANNEE 10
NUMERO 39

DIMANCHE
15 FEVRIER 1942

KOVARA KURDÎ ✦ REVUE KURDE

## TEFSÎRA QURANÊ

268 — Iblîs we bi belingaziyê ditirsîne û şîretên çavtengiyê li we dike. Xuda bi efiw û kerema xwe bext dide we, Xuda zana ye; kerem û comerdiya Xwedê mezin e.

269 — Xwedê ji kîjkî re dixwaze ilm û marifetê dide û Xuda bi vê dayînê xeyrekê mezin digehîne wî. Lê bi tenê mirovên bîrewer û eqilmend qedr û bihayê vî ilmî dizanin û pê emel dikin.

270 — Xuda tiştên ko we ji malê xwe di riya wî de daye an nezra ko we kiriye dizane; kes nikare zaliman ji ezabî bifilitîne.

271 — Heke hon sedeqa xwe aşikare didin çê ye, lê heke hon ji belengazan re bi dizî didin hêj çêtir e.

Sedeqa we hin gunehên we hiltîne. Xwedê tiştên ko hon didin an dikin dizane.

272 — Pêxemberê min .... Anina mirovan ser riya rastiyê ne wacibê te ye. Xuda her kesê ko dixwaze digihîne rastiyê. Tistên ko hon ji malê xwe didin, xeyra wê ji we re ye.

Hon xeyra her tiştê ko seba xwestina rizaya Xwedê didin bi zêdahî wê bibînin û tu neheqî li we naye kirin.

273 — Arîkariya hewcedaran bikin yên ko di riya Xuda de, di şer û kuştinê de ne û ni karin dest bi ticaretê bikin, ên nezan wan dewlemend dihesibînin, ji ber ko ew belengaziya xwe pêş xelkê na kin, lêbelê Pêxemberê min, ji rengê rûyên wan tu wan xweş nas dikî. Ew bi xwestina sedeqeyê xelkê aciz na kin.

Gelî camêrino .... heke hon arikariya wan dikin Xuda pê dizane. Xuda dizane we ji kê re da û ji bona çi da.

274 — Yên ko ji malê xwe, di riya Xwedê da şev û roj, bi dizî an bi aşikare didin xeyra Xwedê digehe wan, di roja piştdawiyê de ji wan re tirsa ezêb nîne û ew xemgîr nabin.

275 — Yên ko faizê distînin, halê di wan di roja piştdawiyê de gava ji gora xwe radibin, mîna wan in ko Iblîs destê xwe da ye wan û ew gêj û dîn bûne.

Ji ber ko wan got: Kirîn û firotin mîna standina faizê ye.

Ne were ye... Xuda kirîn û firotin helal lê standina faizê heram kiriye. Lê yê ko bi emrê Xwedê bîrewer dibe û êdî dest ji standina faizê dikişîne, gunehê wî tê efiw kirin û faizên ko wî berî emrê Xwedê standi bû, jê naye pirs kirin.

Lê yên ko piştî emrê Xwedê ji nû ve faizê distînin wê bikevin agirî û tê de wê her bimînin.

276 — Xuda keda faizê xira dike û malê ko jê sedeqe tê dayîn digihîne zêdahiyê. Xuda ji kafir û gunehkaran hez nake.

277 — Yên ko bawermend bûne û tiştine qenc pêk anîne, nimêja xwe kirine û zekatê dane sewaba wan li nik Xuda heye.

Xuda wan digihîne sewabê.

Ji bo wan di roja piştdawiyê de tirs nîne û ew xemdar na bin.

278 — Gelî bawermendino ..... Ji Xuda bitirsin û dev ji standina faizên mayîn berdin.... heke we baweriya xwe bi Xwedê aniye.

279 — Heke we dev ji standina faizê bernedaye, bizanin ko hon bi Xuda û bi pêxemberê wî di şerî de ne. Lê heke hon tobedar dibin résmalê we ji we re ye. Zilmê me kin da ko zilm ne gihe we

280 — Heke deyndarê we di tengasiyê de ye, li hêviya destfirahiya wî bimînin û eger hon di heqê xwe diborin ji we re hêj bi xêrtir e. Heke we bizaniya....

281 — Ji wê rojê bitirsin ko henê bigehin Xudayê xwe. Tê de her kes li gora emelê xwe li ser heq û edaletê berpirsiyar dibin û tu neheqî li we na'ye kirin.

282 — Gelî bawermendino... Gava hon deynekî dikin û ji bo vegerandina vî deynî wextekî datinin, divê hon vî binivîsînin, bila katibekî bi. çi awayî hon li ser vegerandina vî deynî li hev hatine li gora wê binivise.

Bila yê ko dinivîse, her wekî Xuda jê re da elimandin rast binivise û xwe ji vê nivîsandinê ne de paş.

Deyndar divê ji katib re teqrir bike û ji Xuda bitirse ji deynê xwe tiştekî kêm ne ke.

Lê heke deyndar kêmaqil, lal an sefîh e û ni kare teqrîr bike, bila weliyê wî ji bo wî li gora rastiyê teqrir bike.

Di vî îşî de banî şahidan jî bikin. Şahid divê dido û mêr bin, heke dû mêr peyda na bin bila mêrek û du jin bin. Jin divê dido bin da ko heke yekê ji wan ji bîr dike şahida din bikare arîkariya wê bike.

# HEDÎSÊN

## CENABÊ PÊXEMBER

REHMET Û SILAVA XWEDÊ LÊ BE

456 — Heft mirov hene ko her kes ji wan bigere ji, Xwedê dev ji wan bernade: yê ko bi dilekî pak niméja xwe dike, yê ko jineke spehi û dewlemend jê hez bike ji, ji tirsa Xwedê pê re zinayê na ke, yê ko bi dilekî pak û rast ji hevalê xwe hez dike, yê ko gava qisûra xelkê dibine çavê xwe digire, yê ko di dema şerî de tim li pêşiyê ye, yê ko qisûr û gunehên xwe her tîne ber çavê xwe û ji bona xelasiya nefsa xwe dixebite; yê ko xêrxwazi xelkê ye û ariya wan dike.

---

Gava ji bo şehdetiyê banî şahidan dikin bila ew xwe jê ne din paş.

Deyn piçûk be mezin be tiralî û kêmgirtiniyê me kin, her dest bi nivîsandina deynî û dema vegerandina wî bikin.

Emrê Xwedê ji adet û daxwazên we zêdetir li gora edaletê ye û nivîsandina deynî li nik Xuda hêja ye, ji ber ko seneda we a deynî gotina şahidan dişidîne û îşê we pêk ditîne û we ji şik û şibheyê diparêze; meger ko dan û standina we bi malhazirî çêdibe; vê gavê ne nivîsandina senedê ji we re ne tu guneh e.

Her hal ko firset kete destê we di dan û standinê de her banî şahidan bikin. Bila ji katib û şahidan re tu zerer ne gihe; divê ew îşê xwe li gora rastî û edaletê pêk bînin û hon jî bi wan re li gora rastî û edaletê bimeşin.

Ko zererê we giha katib û şahidan, hon gunehkar dibin.

Ji Xuda bitirsin, hon dibînin ko Xwedê we hînî zanînê dike.

Xwedê her tiştî dizane.

---

Ji bona Tefsîra Quranê K.K. û li hejmaêrn 27, 28, 9,2 30, 31, 32, 33, 34, 35, 36, 37 û38 an fedkirin.

457 — Ne pir bikin, ne hindik bikin, bi can û bên bikin.

458 — Yê ko li dinyayê digere û bîrbira zanîna dinyayê dibe, mîna mirovek e ko roji digire.

459 — Mirovên ko ji bona debara feqir û belengaza dixebitin, mîna mirovên ko rojên xwe bi girtina rojiyê û şevên xwe bi nimêjê diborin an riya Xwedê da şer dikin qedrgiran in.

460 — Mirovê xirabtir ew e ko zana ye û neçê ye.

461 — Comerdî darek ji bihuştê ye ko şax û guliyên xwe ber ra erdê daye; yê ko destê xwe davêje guliyên wê darê û comerdiyê dike, cihê wî bihuşt e; û çavtengî darek ji dojehê ye û şax û guliyên wê li erdê xwar û marû bûne, yê ko destê xwe davêje guliyên wê darê û çavtengî û serberjêriyê dike mêvanê dojehê ye.

462 — Giran bin, giran bin, xulqfireh û baldirêj bin, Xwedê ji giranî û dilbirehmiyê hez dike, li xwe me kin lez.

463 — Mirov bi xulqfirehiyê digehe miradê xwe; bi ecelê jê mehrûm dimîne.

464 — Mirovên xirabtir ew in ko ji malbateke dewlemend in, her tiştê wan zehf û çak e; paşî radibin henekê xwe bi xelkê dikin û feqir û belengaza kêmî xwe dibînin.

465 — Mirovê xirab ew e ko zar û zêçên xwe di tengiyê de dihêle.

466 — Mirovê ko xelk ji dest û zimanê wî ditirsin peyayekî xirab e.

467 — Ji bona mirova du belayên mezin hene; tirs û çavtengî.

468 — Ibadet û qenciya ko ji bona xapandina xelkê tête kirin mişriki ye.

469 — Mirov pir dibin lê di hejkirina mal û saxiyê de, dilê wan her ciwan dimîne.

470 — Miriyê deyndar di gora xwe de girêdayî ye, ko deynê wî hate dayin serbest dibe.

471 — Sedeqa ko bi dizî têtе dayin xwediyê xwe ji xezeba Xwedê diparêze.

472 — Gava nimêja xwe dikin sola xwe ji piyê xwe me kin, me bin mina cuhiya.

473 — Xewa sibehê dibe manil rizqê we.

474 — Mirov bindestiya bavê xwe bike qey bindestiya Xwedê kiriye, lê rabûn li ber Xwedê asêbûn e.

# DÎWANA MELÊ

— 13 —

Lew seher cewlan didet bayê sebayê rast û çep
Sosin û sinbil bi mestî tên semayê rast û çep
Da ji mihraba du nûnan secde bit eswed hecer
Dil bi mîzan mahi nû ebrû nimayî rast û çep
Dil ji biskan filfilîn nû ser dida xala siyah (1)
Şehperî zilfa şepal wî dalê daê rast û çep
Alemê wêranî zilfên te ji rengê enberê
Çerx û perwazê didin carek li bayi rast û çep
Xencer û tîr û teber barîne şibih berq û birûsk
Misriyan lanih ji elmasan didaî rast û çep
Teblik û eqd û şerab û nitrik û berk û wereq
Her bi lerz û cezbeyên yaqût û taî rast û çep
Bişkoyên benda girêbanê ji rengê kewkeban
Berq û tîr û şîr ji xurşîdê vedayê rast û çep
Kewkeb û qewsî quzeh lûlû (2) li benda heyderî
Tên tewafa zilf û xalên dilribayê rast û çep
Dil dixûnit zilf û xalan dêm û balayên ji nûn (3)
Her bi qanûn mijdê da xeybê ji nayê rast û çep
Zengiyan qewsên vebestin pêşberê coqa hebeş

---

475 — Xwarina yekî besî didiwa ye; xwarina didiwa besî çara ye, û a çara besî heşta ye.

476 — Xwarina comerdekî şifa û derman e, a çavtengekî derd û bela ye.

477 — Heke mezin û zana şîreta li xelkê dikin heq û rast e, heke nezan wî îsî dikin, îsê bê rê û durûtiyê dikin.

478 — Barê xelkê sivik bikin, giran me kin, nav di wan bidin, xeyreta wan meşkinînin.

479 — Xwedê dev ji xelkê bêbext û tevlokê berdide û li wan na ye rehmê.

480 — Xwedê pişt û qiwetê dide mirovên ko digehin hev û pev re dixebitin.

481 — Xwedê ji wan xebatkera hez dike yên ko bi dil û can dixebitin.

482 — Wext hene ko mirov tê de sebrê bide xwe mîna agir di mista xwe de bigire giran e.

483 — Tirs we ji belayê na parêze.

484 — Bawermend bêbextiyê na kin; tu kesî na xapînin, hîlebaziyê li kesî na kin, li wada xwe na qulipin û li pê wada xwe derin.

485 — Destê xwe bê rê ma vêjin malê xelkê.

486 — Mirovê ko mêvana na hewîne bêkêr e.

# HÊVIYA ME

Ax û afêt me dijwar in;
Brîn kûr in, sed hezar in;
Xoşya me welat û war in;
Hemî la dipişk û mar in;
Welat bê te em ne mînin!

*
* *

Bihuşta me kurdistan e;
Şêrê mezin Kamiran e;
Pilingê lat û gelyan e;
Serdarê hemî miran e;
Bo ditna te em yêt din in!

*
* *

Kurdistanê. tu ya şeng î
Hemî dema ya bê deng î

---

Da birestin yek bi yek çûn ber liwayê rast û çep
Çingeçinga bişkowan awaz û dengê zêrgowan
Sed melaik guh didin ber vê newayê rast û çep
Lew ji eşqa wî dinalin bazin û berk û wereq
Cezbeya dil min ji remza wan gibayê rast û çep
Zihre û eqda Sireyayê ji şerqê keş-şifîn
Leyletilqedrê ji mexreb perde daye rast û çep
Zihrerengê mah û xurşîdê ji bala wî nima
Lew du kewkeb çûne vê ra istiwayê rast û çep
Bête eywanê ji xelwê hûriya qudsî sirişt
Sed hezaran rûhi qudsî tên liqayî rast û çep
Ma melayî ez lebi leilabi heywan bit nesîb
Qudsiyan ragirtine destê diayê rast û çep.

— 14 —

Nêrgizên şeng di mest in çep û rast
Saqiyan cam di dest in çep û rast
Rast û çep têne (1) ceger sîne kulab
Ererên şeng di mest in (2) çep û rast
Tuxî ala ko xuya bin ji ecem
Ereban tîp şikestin çep û rast
Pir bi şerqê û seher westayin
Hindiyên rojperest in çep û rast
Qeyserê rûm li serhadi fireng
Top û zencîr vebestin çep û rast
Her du destên xwe hemaîl şevekê
Me ji bo yar dixwestin çep û rast
Li Melê sirperiya hûri - sifat
Sed melek dest bi dest in çep û rast

FERQÊN NIVIŞTON

— 12 —

(1) Dil ji biskan filfilîn nû fer dida xala siyeh. (2) lûlû û benda heyderî. (3) ji nûr.

— 14 —

---

(1) dane. (2) dibestin.

Şêrê mezin heta kengî?
Birin dijwar in, xîn pengî
Hemî gava b'toz û, şîn in.

*
* *

Gula meznî ji çakiya;
Bijî, bijî; mîrê çiya!
Tu baran î, em în giya
Nê neyaran welat kiya
Heta kengî dê ho mînin!

*
* *

Celadet beg li gel te da
Roj in, l'nav esmanê me da
Pişt we dinê kesek ne da
Hindav hemyê li bin we da
Paşî we, me ne vêt rûnin.

*
* *

Hîn in hîvya Kurdistanê
Roj in radikin taristanê
Bihar in, diben zivistanê
Ewr in jor da den baranê
Gî divin emê wet bînin.

*
* *

Em sotiyê ditna we ne,
Kuştiyêt viyana (1) wey ne
Tu her ser î, em her pêy ne
Xudanê mey hindî hey ne
Bê serbestî em na rûnin.

SALIH BAMERNÎ

---

(1) viyan - hevîn.

---

# SENGEPOR

Di şerê Pesifîkê de japonan piştî ko li wargehên emêrikanî dane û stola emêrikanî ji bo mideki ji riya xwe bi dûr xistine, zora xwe, nemaze dane Sengeporê û di Melêziyayê û di riya behrê re dirêjî wê kirine. Sengepor jî bi her awayî hêja ye û jê re kilita behran dibêjin.

Sengepor giravek e, û dikeve nîvroyê Melêzyayê û li ber pozê vê nîvgiravê û li bakurê girava Simatrayê ye. Simatre jî giravek ji giravên Hindistana holendî ye.

Girava Sengeporê 44 kilomêtir dirêj û 22 kilomêtir pehin e. Ev girava hûr-lê hêja û biqîmet ji Londrê, ji payîtextê Ingilistanê 13000 milên behrî dûr e. Ji Sengeporê heta

Londrê û li ser riyên Behra hindî û behrên sor û spî de sê kilîtên din hene: Babelmendeb, Siwêş, Cebeltariq. Ev her sê kilit jî di destê Ingilterê de ne

Di girava Sengeporê de 500000 çînî, 100000 melêzî û qederê 10000 ewropayî rûdinin. Me ev hejmar ji statîstîkeke kevin girtine. Dibêjin ko nifûsa giravê îro di ser milyonekî re ye. Mîxdarê ewropayiyan yanî ingilîz û peyayên wan, bivê nevê, di wextê şer de bêtir dibin. Bi wan re wek hindî û ewistraliyan, miletine din jî û bi hênceta eskeriyê têne giravê.

Ingilîzan ji bo asêkirina Sengeporê gelek pere dane der û ji vê giravê keleheke nestandbar aninepê. Xebata asêkirina giravê heta 14ê Sibata sala 1938 an dom kiriye û 600 milyon freng lê çûye.

Ji birc û barû, şargehên top û mitralyozan pê ve, di giravê de ji bo zad û cebirxane û ardiwên avîn depoyine zêrzemînî hatine çêkirin. Di wan depoyan de milyonek ton benzîn dikare bête veşartin. Tonek benzîn 50 teneke ne. Li gora vî hisabî mixdarê bênzîna ko di wan depoyan diçe 50 milyon teneke ne.

Di dora Sengeporê de giravine hûr wek Bolan û Tikang hene. Ingilîzan ew girav jî asê kirine û bilindcihên wan topine giran û her texlit hesincawên cengê êxistine.

Balafirgeheke giravê heye; dibêjin ko di dinyayê de jê meztir û spehitir tu balafirgeh nîne.

Di bendera Sengeporê de gir û hûr, ji bo her texlit vaporên barkêş û cenkeştiyan tersaneyin hene. Ew vapor heke xesarzede bûne di wan terşanan de tamir dibin û ji nû ve bi kêr tên.

Pesarekeke (1) Sengeporê heye ko bi tenê ji bo anîna rikin, dep û stûnên wê ên hesinî 38 milyon freng hatiye serf kirin. Li ser pesarekê qederê 60000 peya cih dibin.

HESENÊ MISTÊ

(1) Cihê ko vapor lê pal didin û barê xwe pê dadikin û rewingiyên xwe lê peya dikin.

# HINDIK RINDIK

ŞER Û BERAZ — Ma çi îşê berazan di şerî de heye. Heta niho herçi misilman in ew dikuştin û ji bela wan xelas dibûn. Herçî filehan ew dikuştin û goştê wan dixwar. Lê di vî şerê xedar û bêeman de beraz bi kêrî mirovan tên û bi wan re têne kuştin.

Herwekî şerevanî li behrê torpîl direşînin û gava vapor li wan dikevin ew diteqin û pê vapor berhewa dibin welê ji û di şerê bejê de jî erdê torpîl dikin û gava esker an erebeyên mitorkirî di wan erdan re derbas dibin ew torpîl diteqin û xesarine mezin digehin esker û ereban. Ji lewre gava esker dikevin erdê dijmin keriyek berez didin pêşiya xwe û bi vî awayî beraz pê li torpîlan dikin wan diteqînin û li şûna mirovan ew dimirin.

TEVNEPIRK — Belê di vî şerî de tevna pîrê jî bi kêr têt. Ew tevna ko kebaniyên malê jê aciz in û hero ji quncikên dîwarên xwe rêş dikin û tavêjin zibilgehê. Di cenkeştî û balafiran de ji bo ditina armancê û lê nîşangirtinê dûrebin û teleskopin hene. Ji wan aletan re tayine gelek zirav û li gora wê ziraviyê xurtî jî divêt. Wer dixuye ko di vê ziraviyê de ji tayên tevnepirkê xurtir tu ta nînin. Ji lewre van tevnan didin hev û ji wan tayan dûrebîn û teleskopê çêdikin.

GUR Û ŞÛR — Îsal di her derên dinyayê de sermane xurt çêbûne û ji adetê der berf bariye. Zivistan li Birxaristanê jî xurt bû, gund û bajar ji hev qut bûn û di bin berfê de man; gurên birçî bi keriyan daketin dora avahiyan. Zabitekî birxarî li dora gundekî de rasti keriki gur hatiye. Guran dirêji wî kir. Bi zahit re çi tifing çi şejderb hebû. Zabitê mêr û camêr li şûrê xwe xebiti û ji keriyî çar gur kuştin. Gurên mayîn revîn; lê piştî mideki disan li zabit vegeriyan. Zabit disan da şûrê xwe lê şûrê wî hew dibirî, ji ber ko xwîn lê cemidi bû û şûr bû bû rotikek. Guran zabit kirin piç û parî. Gava gundî gihaştine ser di mextela zabit de ji şûr û çizmeyên wî pê ve tiştek ne ma bû. Guran bi tenê ew ne xwari bûn.

TOP Û COTKARÎ — Herwekî nas e, casûsî di şeran de çekeke xurt e. Di betariyeke rûsî de kumandar bala xwe dida û di-

dît ko balafirên elemanî zûka cihê wî keşif dikirin û li betariya wî dixistin. Lê elemanan bi awakî welê dihingaftine betariyê ko kumandar lê ecêbmayî dima. Dawiyê kumandar gote peyayên xwe : « Zarono çavên xwe vekin divêt dora me de yek hebe ko rêzaniya dijmin dike ».

Eskeran bala xwe da. Li nîzingî betariyê cotkarek hebû û di bin barana bimban de bê tirs û lerz cotê xwe dikir. Kiraseki spî li cotkarî hebû. Eskeran çû, cotkarî girt û anî. Cotkarî casûsekî elemanî bû. Kiraseki spî li xwe kiri bû ji bona ko balafirvanên elemanî di reşahiyê de wî zûka bibînin. Cotkarî bi haletê xwe şûvine welê radikirin ko ew tev de îşaretin bûn û balafirvanên elemanî pê cihên topên dijmin nas dikirin. Ne hewce ye em bibêjin ko cotkariyê me işareta dawîn di sêpiyê de da.

FRENKO Û DELALKE EMÊRÎKANÎ — Vê paşiyê balafirvanekî kenadî bi navê Vitdal bi artîsteke emêrîkanî — Edît Roge — zewiciye û gava general Frenko diktetor û serekdewletê Spanyayê bi vê ziwacê hesiyaye gelek eniri û li ber xwe ketiye. Ma Frenko çi ji vê ziwacê ye? Delala emêrîkanî Edît Roge Frenko xapandi bû.

Di şerê Spanyayê de balafirvan Vitdal di xizmeta soran yanî cimhûriyetciyan de bû û şerê eskerên Frenko dikir. Vitdal di şerekî de hêsîr ket û bû mehkûmi îdamê. Sibetirê ewê bihata bi dar ve kirin. Jina Vitdal ji Frenko re kavezek rêkiri bû û efîwa mêrê xwe dixwest. Sûretê jinikê jî bi mektûbê ve bû; jinikeke delal û bedew. Frenko Vitdal efîw kir û gava şer qediya balafirvan vegeriya welatê xwe. Edît Roge artîsteke emêrîkanî bû, di Ewropayê de digeriya û piştî îşê Vitdal deng pê keti bû. Lê ew ne jina Vitdal bû û ew nas ne dikir jî. Hîle li Frenko kiri bû û vê paşiyê gava vegeriya Emêrîkê rabû û Vitdal kir. Frenko ji ber vê fena jinkê xeyidî lê hew dikarî bû Vitdal bi dar ve bike.

XEBERGUHÊZ

# GUNEH

Carekê min di kitêbekê de xwendi bû : « Serhatiyê meriv çiqas kevnar be, di mejiyê meriv de hewqas şopên kûr dihêle . . . »

Rast jî wisan e; teştên ko min di biçûkiya xwe de ditine, serhatiyê wê gavê iro pîr qenc, gelek bi zelalî tên bîra min . . Lê tiştin hene ko dihî, pêr min ditine; an bihîstine, an jî hatine serê min bi xwe, îro zû bi zû nayên heşê min . . .

Qey gava meriv zaro be, mejiyê meriv hêj bêtir nerm û taze ye; ji lewra birok û serhatiyê meriv bi hêsanî tê de cih digirin û her ko zeman derbas dibe şopên kûr dihêlin .. Eve, yek ji serhatiyê biçûkî :

Bihar, diqediya. Havînê, nih dest pê dikir. Êdin herkes ji germa rojê derçviyan; xwe davêtin bin siha darekê an diwarekî . . .

Piştî xwendinek heşt mehan, dibistana me jî deriyê xwe li me digirt . . . Ez, bi xwe pir kêfxweş bûm; heşt meh xwendin, di nav wê girigêç û hay û hûyê de, di nav wan dîwarên teng û tarî de, ne tenê canê min, rihê min bi xwe jî bawi bû bû. Dilê min kufik û zingar girtî bû . . .

Gava mamosteyê me mizgîna belavkirina dibistanê ya havînî da me, ne tenê ez, hemî suxteyên dibistanê mîna çivîkên ji qefesê azad dibin, çirevîtik didan xwe, kumên xwe ber bi ezmanan davêtin. û digotin : Her bijî Mamosta ! Her bijî Mamosta ! . . . Tenê sê, çar zarokên tiral digiriyan, di sinifa xwe de ma bûn, û li ber mamoste û hevalên xwe rûsar diman : Tirsa dê û bavê wan jî da bû ser dilê wan, bêhemd ji çavê wan hêstir diherikin. Giriyê van zarokan hinek kêfa min kêmtir dikir, dilê min bi halê wan dişewitî ...

* * *

Piştî girtina dibistanê qederek derbas bû bû; rind naê bîra min, Xwedê zane mehek an meh û nîvek. Ez û çend hevalê xwe ji ser zinarekî derbasî ser latekê dibûn, kaş bi kaş, newal bi newal li hêlînê çûkan digeriyan; bi saetan ve bi dû çêlikê wan ên nihfirî diketin; me ew digirtin, ew heywanê bê zar û ziman heta di nav pepikê me de bimirana, me bi wan dilîstin . . .

Em, carina serqot, carina ji pêxwas digeriyan û ji vî halê xwe bêtir şa dibûn. Kum û sol û cilê me ji me re teng dihatin, bi her hawayî me dixwest em serbest bin...

Çiqas car histiriyê kaşan lingên me diqelaşt, û kelemên dar û deviyan lingên me xwîn dikirin. Dîsa ne xema me bû. Haya me ji me tune bû; lîsk, serbestî, azadî em sermest û serxweş dikirin... Çend caran me ji dê û bavê xwe gotinên tal dibihîstin, dîsa me guh ne dida wan...

Piştî heşt meh xwendin û ew jiyîna zîndanî, sê çar mehên havînê serbestî para me bû heqê kesî tune bû me ji vê azadiyê bê par bike.

Rojekê min û sê çar hevalan me gotina xwe kirin yek: emê biçûna Şikefta Birxêrê, nêçira çêlkewan... Şikeft ji gundê me bi sê çar saetan dûr bû. Ji ber germa havînê kewan teva çêlikên xwe, xwe davêtin bin siha vê şikeftê. Di şikeftê de kaniyek jî hebû. Lê şikeft ne xalî bû; cihê pîrebok, cin û periyan bû. Heta min ji pîrika xwe carekê bihîst ko Şikefta Birxêrê payîtextê padîşahê cin û periyan e, kes ne wêrî bû here hundirê vê şikeftê. Heta peyayên mezin bi xwe jî taqet ne dikirin. Lê zarotî, ji bona nêçîra çêlkewan, ne cin li ber çavê me xuya bûn ne perî... Ji xwe me dixwest cara ewilî em vê mêraniyê nîşan bidin; di şikefta cin û periyan de nêçîra çêlkewan bikin.

Reşo û Remo li ber derî man, ez û Cemo jî ketin hundirê şikeftê; ha li vir, hali wir me sê çar çêlkew girtin. Ew pir biçûk bûn, nikarî bûn bifiriyan. Di wê gavê de dinya bi genc û xezînê xwe ve bidana me, em hewqas kêfxweş û dilgeş ne dibûn. Lê em hebekî westiyan; li ber derê şikeftê darek tûê hebû, em li bin siha wê rûniştin, me him xwe rehet dikir, him jî em bi nêçîrên xwe şa dibûn... Hingî Cemo ti bû bû; dixwest here hundirê şikeftê avê vexwe, lê bitenê ne wêrî bû. Min dizanî bû li xwe danine ji kesî re bêje: bi min re were hundirê şikeftê, ez ne wêrim bi tenê herim. Min, bêgûman dizanî bû ewê bi tenê here... Di wê gavê de şeytaniyek hate bîra min. Min xwest ko mêraniya Cemo biceribînim. Min xwe ji wan vedizî û ketim hundirê şikeftê. Ne Cemo ne jî tu hevalan çûyîna min a şikeftê ne dîtin. Min di quncikekê de xwe veşart. Min dît Cemo hêdî hêdî, bi tirs lingê xwe davêje û tê. Şikeft tarî bû, hêj av venexwarî bû, gava nêzikî min bû, ji nişka ve, bi dengekî bilind min go: pix... pix!

Heyhat!... Cemo, di dilê xwe de got qey cin e, bi tirseke mezin veciniqî û ket erdê; dev û diranê wî ketin hev. Çiqas min deng lê kir qet li min venegerand. Bi tenê çend caran çavê xwe vekir û bi tirs li min nêrî. Çavê wî ê kesk di nav tariya şikeftê de mîna du cinciqan diçirisîn...Hingê min fam kir ko min qebahetek, an hêj bêtir, guneheki mezin kir. Ez çûm cem hevalan û min ji wan re got: werin bê çi li Cemo hatiye?

Em her sê çûn cem wî, çiqas me kir ne kir me nikarî bû ew ji cihê wî bilivanda. Ji xwe em giş zarok bûn, em her sê çar jî, heft heşt salî bûn... Hingê dengê bilûrekê ji dûr ve hezîn hezîn dihat. Me dizanî bû xwediyê vê bilûrê şivanek e. Reşo û Remo li ber Cemo man, min xwe li dengê bilûrê girt. Piştî qederekê min xwe gihand şivên û min serhetiya me ji wî re got. Şivan, ji dûr ve, meriyê Cemo dihat; pezê xwe sipart hevaleki xwe û bi min re hat şikeftê; Cemo li pişta xwe kir û em bi hev re vegeriyan gund. Hêj zimanê Cemo ne digeriya, min jî ji fediyan, qebaheta xwe vedişart, heta min ji hevalên xwe re jî rastî ne digot.

Em çawan vedigeriyan gund? Dê û bavê Cemo ewê ji me re çi bigotina. Meê ji dê û bavê xwe re bigota çi?! Çar ne çar em diçûn.

Çîroka me zû li nav gund belav bû. Bavê min, di mal de ez heps kirim. Min bihîst ko hevalên min jî mîna min heps kirine. Hêj jî zimanê Cemo venebû bû. Her kesî digot: Ciniyê wî şeytanî ye, ne rehmanî ve û gişan, ji dawiya Cemo ditirsiyan, tenê Şêx Sedeqe...

Şêx Sedeqe, bi cin û periyan dizanî bû. Ev kalê rîsipî ko zeman pişta wî xwar kiri bû, bi nav û deng bû... Eslê wî yan ji Mekê bû yan ji Medînê... Min bihîst ko Şêx, ji bavê Cemo re gotiye. «Heke tu deh zêran (pênç pêşîn, pênç paşîn) bidî min ezê kurê te rehet bikim...» Bavê Cemo jî qail bû bû û goti bû «Tu kurê min rehet bike mal û milkê min giş ji te re pêşkêş in...»

Êdin her kesî hêvî dikir ko şêx ewê Cemo rehet bike ... Tenê min bawer ne dikir. Min derd û êşa Cemo ji Şêx bêtir û çêtir zani bû ...

Gava cemo birin cem şêx, şêx ez ji xwestim nik xwe, û ji min çend pirs kirin : « Wexta ko Cemo çû şikeftê, cihê ko lê keti bû xwar, û çiqas nezîkî qoziya çepê bû, çiqas dûrî qoziya rastê bû ?? » û bi kitêba xwe dinêrî û bi qelema xwe a qîjoti li ser kaxetekê çend xêz û nixtik çêdikir û serê xwe dihejand û digot : « Min fam kir ... Min nas kir kîjan cin e ... ev cineki şeytanî ye, jê re dibêjin : polotox .. »

Paşê li ser neynûkên dest û lingê Cemo bi qelema xwe tiştin nivîsand û got « Min cini di laşê wî de heps kir, heta ez wî ne kujim, bera nadim, ka ji min re destek şivê ter binin ».

Xulamê wî Dilo, gurzek şivê hinarê jê re anin û bi lingê Cemo girt û bilind kir, şêxê wî jî, şiv bi şiv di lingê wî zarokê reben dişikand ... Cemoyê ko heta wê gavê zimanê wî ne digeriya qirîna wi diçû ezmanan. Lê şêx digot « ev ne dengê Cemo ye, hêj zimanê wi girêdayî ye û dest bi lêxistina xwe dikir û digot : Efrît ... şeytan ... ma tu ji destê min bi kû da birevî » û bi zimanê cinan çend pirs li ser dikirin : têmatim ... tenatin ... şin ... şin ...

Xwîn ji bin lingê reben diherikî, gava her darek li bin lingên reben diket, tirên birûskê li dilê min dixist ... Min nikari bû rastî bigota. Ew roj ne bû êvar, Cemoyê reben ji ber darên wî zalimê xedar mir.

* * *

Ev bûn bîst, bîst û çend sal ... ev çirok li serê min qewimiye. Hêj ji bira min ne çûye. Ji min re bûye derdek, di hundirê min de bûye girêkek, di dilê min de bûye birînek ... birîneke pir kûr. Sal bi sal nêm û kêma wê bêtir, êşa wê zêdetir dibe. Giyanê min ji ber diheje ... Gelek caran, Cemo di xewna xwe de dibînim; li hember min melûl melûl disekine û bi gilî û gazin ji min re dibêje.. bêbext ... bêbext !

A-Ziwan : 28-1-942 QEDRÎCAN

# ÇIYAYÊN SILÎVAN

Çiyayê Silivan, Çiyaki bi dar û av e. Darên çiyê ji mêj ve ji sêv, ji şeqoq, ji hejîr, bi gwîz û bi dêlî ve xemilandî ne.

Ev darên ha giş bê xwedî ne. Xelkên vî çiyayî bi serbestî jê dixwin. Dar û deviyên vi çiyayi gelek mezin in.

Çiyayê Elbatê bi timamî bi darên hêjiran xemilandî ye. Dirêjahiya wî çiyayî 30 û pehniya wî 25 kilomêtir heye.

Satarê tu kesî tê de nine. Di ser riya Erqenisê geliyê gûza heye; di vî geliyi de bi hezaran û bi sed hezaran darên gwîzan hene

Di vî geliyi de jî satarê tu kesî nîne.

Ev çiya ko kela Mêreniyê li ser e, teji darên sêv û şeqoq e û bi dêliya xemilandi ye. Di wî çiyayi de, du kaniyên mezin bi kuleteynan hene. Ev her du kanî seyrangehê xelkên Narikê ne.

Di Narikê de nîzîkahî ve sih gund hene.

Ev gund cihê cihê giş bi navdeşt û çiya, bi av û bi aş e. Şewil hene ko tê de hevde û hejde aş digerin. Rûniştimanên gundan hind jê pêncsed mal, hindekî ji sed mal hene.

Havîn û pehiza vî çiyayî gelek şîrin û hênik e. Navdeştên vî çiyayî giş dehl, rez û bi darên fêkî teji ne. Ev erdê ha yê navdeşt bi satar in.

Hêja bûna vî çiyayî nemaze ev e ko tê de kana kevirên aşan peyda dibin.

Divê neye ji bîr kirin ko aşên Kurdistanê kevirên xwe ji kana vî çiyayî tînin.

Di kurdistana me de li deştê Şor û Deqnat, li çiyê Helda û Boşat bi nav û deng in. Şor û Deqnat di deşta Silîvan de ev cih in ko ji qûntara çiyê avên bist, sih aşî hi hev re û bi carekê ji kanikê dertê ser rûyê erdê.

Helda û Boşat berberê hev û her yek ser zinareki yekperçe du qesrên mezin in.

Di navbeyna wan de deşta Narikê heye. Di ser vê deştê û bi her du qesran û gundên di wan re, çiyayê Elbatê û çiyayê Fişatê bilind dibin.

Ji xwe deşta Narikê ne deşteke dorberedayî ye,ew di navbeyna çar zinarên bilind û dirêj de ye, ew zinarên he mîna bi şûr hatine birandin yekperçe ne.

kariyê bikin, û riyên Bûrmê û Hindistanê midafehe bikin.

Ji milê din japonan li 23ê Kanûna paşîn esker derêxistine giravên Selmon, Gına-Nû, Irlanda-Nû û Britanya-Nû, tev de mistemlikeyên taca ingilîzî. Şer di wan giravan de jî dom dike.

ŞERÊ LÎBYAYÊ—Herwekî xwendevanên me dizanin li 18ê Çiriya paşîn 1941 şerê Lîbyayê ji nû ve dest pê kiri bû û ingilîzan berda bû talyan û elemanan û ew ji Lîbyayê derêxisti bûn û beta bi tixûbên Trablisxerbê ajoti bûn. Ber bi dawiya meha Kanûna Paşîn 1942 ingiliz gihaşti bûn Egêdabyayê û keti bûn ê. Romel eskerên xwe ji Egêdabyayê heta bi şêşt kîlomêtrî wê ve kişandi bû û berê xwe da bû Trablisxerbê.

Di vê navê de balafirên talyan û elemanî li rojê 10 - 12 caran li girava Maltê dixist. Dihate bîra mirov ko dilê elemanan heye bi peraşûtan esker daxînin Maltê. Lê ev tişt çênebû. Wer dixuye ko jê mexsed melisandina stola ingilîzî bû. Da ko riya behrê ji wan re yanî ji talyan û elemanan re serbest bimîne û tê re ji xwe çek, esker û cebirxanê bînin. Balafirên ingilîzî di behra spi de hin ji vaporên ko ev tişt diguhastin bin av dikirin. Lê bivê nevê hinên din derbas dibûn.

Li 25ê Kanûna Paşîn 1941 ji nişkekê ve weziyet di Lîbyayê de guhêri û eskerê Romel yê ko berê xwe da bû Trablisxerbê li neyarê xwe zivirî. Eleman û talyan ji midafehê derbasî êrîşê bûne: Ingilîzan xwe dane paş. Eskerên Romel li pey hev Egêdabye, Bîngazî û Derne vegirtin û li 6ê vê Sibate gihaştine dora Xezalê û li wê derê sekinine. Xezale dikeve 60 kîlomêtir roavayê Tobriqê. Niho şer di dora Xezalê û di navbera pêşdaran de dom dike; şerekî sivik. Lê bivê nevê ev şer bi êrîşa yekî ji her du şerevanan wê xurt bibe.

ŞERÊ ÛRIS — Êrîşa ûrisan di dirêjahiya eniyê de dom dike. Eleman dikin li ser xetekê bisekinin û li hêviya Biharê bimînin. Lê ûris naxwazin vê firsendê hidin neyarên xwe û tim û tim dirêjî wan dikin. Li gora danezanên rûsî piştî ko ûrisan Mojayesk bi şûn de vegerand êdî Mosko ji her talûkê bi dûr ketiye. Ûrisan pişti ko eleman ji dora Moskoyê bi dûr xistine niho dikin mihasera Lêningradê vekin. Ji bona vê yekê jî ûris di navbera gola Îlmen û Smolenskê de rabûne hicûmê û xetên elemanan di vê mintiqê de qul kirine û niho dikin vê qulê fireh bikin û bikevin paşiya eskerên elemani yên ko li Lêningradê çarnikar hatine. Ji milê din ûris gelek zorê didin Xerkovê. Xerkov di Okranyayê de merkezeke sinahî û gelek bi ehemiyet e. Li gora nûçeyên radyowa Moskoyê ûrisan qederê deh kîlomêtiran nizingi li bajêr kirine; û heye ko Xerkov di van rojan de bikeve destê ûrisan.

ÇÎN Û MAÇÎN — Ev çar sal û tiştek e ko japon şerê Çînê dike û hêj zora wê ne biriye. Belê japonan birekî Çînê, nemazê peravên wê vegirtine. Lê Çîn mina welatê Ûris Kişwerekî mezin û bê pivan e, xelkê wê jî boş e. Çîn li gora Japonyayê welatekî bişûndemayî ye. Lê herçî neyarên japonan hene ji destpêka sefera Çînê ve arikariya Çîn û Maçînê dikin. Pişti ko japon dirêjî Emêrîkê û Ingilterê kir ev her du dewletên mezin bi çar destan bi Çînê girtine û dikin bi her amayî arikariya wê bikin da ko Çîn bikare li pêşiya japonan bisekine û şerê wan bike. Di şerê Pesîfîkê de herwekî Emêrîke kaniya çek û posatan e; di vi şerî de Çîn jî ji hevalbendan re wê bibe kaniya mirovan, kaniya şerevaniyan.

Çîn û Maçîn îro bûye du dir. Birê vegirti û birê nevegirti. Di birê vegirti de japonan hikûmetek danî û ew hikûmet bitenê ji ya japonan dike. Herçî birê nevegirtî tê de hikûmeteke din heye û serekê vê hikûmetê merêşal Çenkeyşek e. Ya ko şerê japonan dike ev hikûmet, yanî hikûmeta Çenkeyşek e.

Herwekî me li jor got îro Çenkeyşek li Hindistanê ye û bi genêral Wêvel û fermandarên ingilîzi ên din dide distîne û eskerên çini hin bi hin tên Birmanyayê. Wer dixuye ko emêrîkanî û ingilîzi hêviyeke nezin di Çenkeyşek de heye. Ji xwe midafeha Birmanyayê midefeha Çînê bi xwe ye; ji ber ko Çîn di vê rê re xwe digehîne behrê. Heke ev rê kete destê japonan halê Çînê wê zehmet bibe.

Şam : 10 Sibat 1942 NÊREVAN

# REWŞA DINYAYÊ

NITQA ÇORÇIL — Piştî ko Mister Çorçil ji Emêrikê vegerıya di welatê ingilizan de li ser halê şer, nemaze li ser şerê rohelatê dûr, kurt û pist zêde bû bûn. Rojnaman digot ko serekwezir Mister Çirçil di pêşberê Meclisê de wê xeber bide û ji meclis û milet re rewşa siyasî û eskerî wê bide zanin.

Dêdiro, li 26ê Kanûna paşin, Mister Çorçil di pêşberê meclisê de xeber da û bi vê xeberdanê mizakerêk vebû û ew sê rojan dom kir. Serekwezirê ingilizan di nitqa xwe de nemaze tiştên jêrin gotine :

Berî her tiştî divêt meclis û milet bizanin ko di parastina azahî û heqê mirovan de êdî Ingiltere ne bi tenê ye. Ingiltere yek ji bîst û şeş dewletan e ko ev bar hilanine û kirine pişta xwe.

Çorçil qala Hes kiriye û gotiye ko Hes hati bû Ingilterê ji bo mizakera aşiyê. Lê aşîke welê ko şertên wê Hitler wê bivekilanda, yanî bi emir bigota. Ev aşî jî piştî êxistina hikûmeta Çorçil wê bihata mizakere kirin.

Herçî şerê Libyayê serekwezîr gotiye ko generel Romel, xwe pêk tani û dikir direjî deşta Nîl bike. General Oçinlêk, fermandarê qewetên imperatoriya britanî rê ne da wî û planên Romel ji hev de xistine û ew tevlî hev kirine. Me Libye ji nû ve vegirt û heke me nikarî bû qewetên dijmin bi temamî edim bikin me du seyekên wê qewetê qeland. Belê di vî şerî de me ji dijmin 36500 hêsîr standine; ji wan 10600 kes eleman in. Kuştî û birîndarên elemanan 11500 peya ne. Herçî talyan in wan ji 13000 peya ji dest dane. Me 1852 balafirên dijmin xistine erdê û 386 tangên wî xerab kirine. Di Libyayê de şerekî nû pêk ve têt; ji ber ko ji dijmin re piştmêrine nû hatine.

Mister Çorçil ji ehemiyeta zefera Libyayê peyiviye û gotiye ko di saya vê zeferê de Qevqas û welatên rohelatê nîzing hatine xelas kirin. Serekwezîr şteẍaliya xwe pêş ve biriye û gotiye : Em îro pêşiya xwe ji berê çêtir û ronaktir dibînin û ji her wextî bêtir ewle ne ko zefer wê bikeve destê me.

Belê rewşa me di rohelatê dur de ne pir e geş e. Ji lewra me bi japonan midare dikir; heta roja ko me zanî ko êdî Emêrîke jî we bikeve şer. Îro Brîtanye pişta xwe daye vî hevalbendê xurt û xwe bi wî girtiye.

Hin dibêjin ko me qewetên xwe weke xwe belav ne kirine û qewetine kafî ne rênekirine Sengeporê Heke me gelek esker bişanda Sengeporê meê deşta Nîl bixista talûkê û eskerên ko biçiwan Sengeporê wê tê de bi mehan û salan ve bêkar û emel bimana.

Îro ji rohelatê dûr xeberine neqenc tên. Heye ko di ayendê de nûçeyên ji van xirabtir ji bigehine me.

Gava di Etlantîkê de min Rûzwelt dit me li ser ketina Emêrikê şer ji xeber da. Herçend wext dibori, ewçend em ewle dibûn ko heke japonan dirêjî me kir em ne bi tenê ne, piştmêrên me hene.

Divêt bête birê ko stola emêrîkanî di Hewayê de bû. Ji lewre me mimkin ne didît û ne diket serê me ko japon ev stola xurt û mezin li ser bask û li paş xwe bihile û li Sengepor û Melêzyayê xe. Digel vê hindê me zîrehpoşa mezin « Prins of Wels » şande Sengeporê û me Sengepor û Honkong ewçend xurt kir ko bikarin midekî direj xwe ji êrişa dijmin biparêzin.

Li 7ê Kanûna-pêşîn gava nimînendeyên niponî li Weşîngtonê digel yên emêrikaniyan mizakere dikirin japonan ji nişkekê ve bi ser me û bi ser emêrikaniyan de girt. Japonan di Pesîfikê de bi miweqetî be jî stola emêrîkanî ji kar êxistine û xesarine mezin gihandine stola me. Ji bona îro di Pesîfikê de, serdestiya behrê ji destê her du dewletên behrê ên mezin, Ingilterê û Emêrikê, ketiye destê japonan. Gelo ev serdestî wê çiqasî dom bike ? Ewê hinde dom bike ko di wê midetê de japon dê bikarin di Pesîfikê de hin mistemlekeyên hevalbendan bêxin destên xwe. Bêşik japon di vê midetê de û di wî erdê fireh û bêpîvan de serdestiya hewan jî wê bêxe destê xwe û derêxistina wî ji wan deran wê bibe işekî zehmet.

Ji xerabkirina Japonyayê re wextekî dirêj û bihneke fireh divêtin. Belê mirov dikare bi hezaran peyan bişîne wan qadên şer ên dûr. Lê hetanî ko serdestî di destê japonan de ye ew peyan nikarin bi kêrî tu tiştî bên bilî ko bibin qurbana gule û berikên dijmin. Min got ko hetanî ko serdestî di destê

japonan de ye. Lê rojekê ev serdestî, serdestiya behir û ezmanan ji destê japonan wê bikeve destên me.

Herçî şerê Sengeporê ye ez naxwazim di vê hahetê de tu kehanetê bikim. Lê ewçend dikarim bibêjim ko erdê Sengeporê bost bi bost dê bête midafehe kirin. Ji bo rêkirina qewetine nû rohelatê dûr me her tevdîrên gerek ditine. Di nîzing de honê berên van tevdîran bibînin.

Mister Çorçil di vê navê de qala Ewistralyayê ji kir û got : Heke eskerên ewistralî yên ko îro di qadên şer ên têvel de ne dil bikirine ko vegerin Ewistralyayê û rast bi rast welatê xwe midafehe bikin em manii vegera wan nabin.

Herçî şerê ûris, Mister Çorçil piştî ko pesnê eskerên rûsî daye gotiye : Emê bi her awayî arikariya ordiwa ûris a qehreman dikin. Tiştên ko Stalîn ji me xwesti bûn me ew hemî jê re rêkirine. Heye ko ji ber nexweşiya hewayê rêkirina hin tiştan bi derengi ketiye Lê di Sibatê de emê tiştên derengmayî jî bigehînin ûrisan.

Çorçil di dawiyê de got : Bi hatina Zivistanê emê bikarin qewetên xwe ji nû ve kar bikin û pêk ve bînin. Û qet nebit, ji bona niho Iraq, Sûriye, Felestîn, Îran, Qevqas û bîrên pêtrolê dûri talûkê ne. Ji roja ko hikûmeta Vişiyê em terikandine tucaran hal û rewşa me weke îro pêkhatî ne bûye. Bi fêdakarine mezin di van du salan de em di rû de manc û ne xeriqîne.

Hinan digot divêt em esker derînin bêja Ewropayê û di erdê Frensê û Holendê de şerê elemanan bikin. Niho ez didim eqlê xwe û dibînim ko heke me ji ya wan bikira emê bi temamî xerab û edim biwan. Ji niho û pê de di hilgirtina barê dijminan de imperatoriya brîtanî ne bi tena xwe ye; Emêrîke bi me re ye.

Mister Çorçil di dawiya mizakera ko sê rojan ajot ewlehiya meclisê xwest. Lebatên hazir, ji yeki pê ve, tev de dengên xwe dane hikûmeta Çorçil.

ŞERÊ PESÎFÎKÊ — Şerê vê eniyê bi xurtiya xwe a berê û bi serdestiya japonan dom dike. Emêrîkanî di giravên Filîpînê de bi mêranî şer dikin û li ber xwe didin. Japonan ew girav hêj bi temamî venegirtine. Qewetên emêrikani di van giravan de hindik in û tu piştmêr ji wan re nayin. Lê wer dixuye ko fermanderê wan generâl Ertûr mêrekî qenc û şerevanekî serdeste ye û dilê wî heye bi qewetên xwe ên hindik heta dawiyê şerê japonan bike û erdê Filîpînê bost bi bost midafehe bike. Herwekî stranê gotiye :
Bihustê lawê heva bi lire be
Mêrê xerab ji mêrê çê bi şade be.

Di erdê holendiyan, yanî di Hindistana holendî dê ji tevgera japonan di van rojan de xurt bûye. Japonan ji çar giravên vê Hindistanê ên bingehîn dido, yanî Bornêo û Selebis besêh vegertine. Li Bornêoyê bîrine petrolê en hêja hena. Lê holendiyan beriya ko terka giravê bidin ew bîr şewitandine. Di Bornêoyê de erdê ingilîzan jî heye. Berê yê elmanan ji hebû.

Japon niho zora xwe didin her du giravên din, Cave û Simatrayê. Balafirên japonî her û her li wargêhên van giravan ên behrî û hewayî didin.

Herçi qada ingilîzan, herwekî Mister Çorçil gotiye weziyet tê de ne ewçand baş e. Japonan pişti ko Melêzye safî kir û erdê vê nivgiravê an mîngiravê vegirt topine mezin anîne pêşberê girava Sengeporê û dest bi lêxistina vê keleha asê kir. Girava Sengeporê gelek nîzingî beja Melêzyayê ye. Japonan qederê çar rojan bi top û halafiran li balafirgeh û istihkamên Sengeporê dane û li 9ê Sibatê, di tariya şevê de lingên eskerên japonî di axa Sengeporê de erd girt û japonan di peravê de çend kozik xistine destên xwe û dirêji xetên ingilîzî kirine. Danezana ingilîzî dibêje ko şerine no di navbera japon û ingilîzan de çêdibe.

Dîsan li gora danezanên ingilîzî, ingilîz di Bîrmanyayê de jî xwe dane paş û japonî ber bi pêş çûne. Japonî dikin Rengûnê—payîtextê Bîrmanyayê—bêxin destên xwe. Rengûn benderek e û li serê riya Bûrmayêye; riya ko diçe Çina nevegirtî. Ev rê gelek bi ehemiyet e; ji ber ko çek û cebirxane yên ko Çenkeyşek pê şerê japonan dike jê re di vê rê re têne şandin.

General Wêvel çû bû ziyareta Çenkeyşek. Vê paşiyê Çenkeyşek ji hate Hindistanê. Ji xwe eskerên çînî hati bûn Bîrmanyayê û hîn ji tên. Yanî çînî digel ingilîzan dikin hev-

Dirêjahiya wan a bakur û niroyî panzde; a rohelat û roavayî neh kilomêtir in.

Ji çiyayê Fişatê û ji yê Elbatê avên kaniyan datên û di ser wan zinaran ve gelek ciyan de dişindilin erdê.

Di bundirê deşta Narikê de gundekî kevn û romanî heye ko jê re Bakûs dibêjin û ji gora gotina xelkê gava yewnanî jê derbas bûn navê vê deştê danine bibuşt.

Di zinarên ko dora deşta Narikê digirin şikeftine destkolayî hene û di wan şikeftan de avahiyên ko xelkê berê ji xwe re çêkiri bûn, mina xanî, dikan bi pêpelingên xwe ve hêj îro têne dîtin û li çêkirina wan mirov ecêbmayî dimîne.

Pehîzê ji axa û mala wî pê ve xelkê vî çiyayî bi hev re diçin Erqenîsê, lê armancan datînin, xort armancan dihingêvin, segmanên vî çiyayî roja Erqenîsê têne nas kirin. Her gund bi tevahî wek malek tên Erqenîsê.

Ew nan û pezê xwe bi xwe re tînin, her gund cihê, cihê bi hev re dixwin.

Ava Erqenîsê ji zinarekî dertê dikeve nav tehtekî yekperçe, bi du sed gavî dimeşe, piştre dikeve kuleteyna piçûk û ji vê ji dertê digehe kuleteyna mezin, ev kuleteyn bi xox û xiyar û bi tirî tête tejî kirin.

Ava Erqenîsê hevqas sar e ko ev fêkî tê de diterikin. Temamî xelkê Erqenîsê bi serbestî û bi tevayî jê dixwin.

Ev xelk sê roj û sê şevan li vê dimînin û roja çaran axayê Silîvan bi tevî zaro û xatûna xwe ve têne Erqenîsê.

Xelk diçin pêşiya Axê û bi şahî gelek tifinga berdidin. Axa bi malbat û zaroyên xwe ve tê serê kaniyê û xelk dest bi govend û şûr û mirtalan dikin û govandê digerînin.

Êvarê xelk xatir ji axayê xwe dixwazin û her kes diçe ser kar û şixlê xwe bes serbendê malbatan li vir, li cem axê dimînin.

Axa heft rojan bi tevî serbendan li ser Erqenîsê disekine, xwarin û vexwarina wî ji gundê çiyayê Narikê ji ber xwe ve jê re tê; axa lê mehvanê eşira xwe ye.

Di nav wan heft rojan de axayê Silîvan bi tevî maqûl û serbendên xwe ve bi roj bi nêçîrê û bi şeva tavla beyvê de, bi govendan mijûl dibe.

Piştî heft rojan Xatûna Axê maqûlên

## SERXWEBÛNA MÛRIYAN

| | |
|---|---|
| Hero şêrê Sileyman | Diçû şehrê mûristan |
| Ewî şêrê neynûk-kuj | Bajar li wan dikir doj |
| Bi vî karî dexl û dan | Ji wan distand bi talan |
| Gavil hiştin şehr û sûk | Kuştin zar û zêrç û bûk |
| Li wan çawa bû hawar | Li ser hev bûn kero bar |
| Ne axa man ne jî beg | Teva şêwra xwe kir yek |
| Tev de rabûn yekî jîr | Ji bo xwe re kirin mîr |
| Dane hevdi soz û bext | Jê re anîn tac û text |
| Hemî çûn ber derê wî | Sûnda wan bû serê wî |
| Tevan çepkên xwe kutan | Bijî bijî mûristan |
| Mîrê wekî Iskender | Ji eywanê hate der |
| Ewî mîrê dilovan | Bi serbestî gote wan |
| Ez dixwazim ziv û zêr | Da ez herim gilyê şêr |
| Zîv û zêr û dil û can | Dan ê çû cem Sileyman |
| Bi wan lingên xwe ên hûr | Berê xwe da riya dûr |
| Belê mîrê qubd û jîr | Dane cem xwe çend wezîr |
| Geh firîn û geh meşîn | Ta gihane Filistîn |
| Xelkên bajêr bûr û gir | Karê xwe wan sivik kir |
| Xwas û peya hemî çûn | Pêrgî mîrê mezin bûn |
| Xweş xweş hatin gote wan | Li eywanê bû mêvan |
| Her dû mîran şev û ro | Pev re kirin guft û go |
| Go ey şahê ser bi zêr | Ez hatime gilyê şêr |
| Divêt wî daleqênî | Tola me jê bistênî |
| Sileymanê keyscihû | Pirsek ne xweş day rû |
| Go ez mûkî dûvê şêr | Nadim bi sed hezar mêr |
| Mîr rabû ser lingê xwe | Lê vegerand dengê xwe |
| Go j'niha û çarê dî | Binêr çi tê serê wî |
| Sileyman jî ne bû tirs | Ne kir serê xwe ev pirs |
| Mir nivîsî yek ferman | Şand welatê mûristan |
| Li kû bon şêr bibênin | Çavên wî zû derênin |
| Şêrê mezin pir qelew | Ji êvar de kete xew |
| Mûrî rabûn weke mêr | Ketin poz û guhên şêr |
| Şêrê sar ê qerbelek | Nava rojê bû kelek |
| Hudhud gote Sileyman | Ka ew şêrê dergevan |
| Kurê Dawûd pê kenî | Hudbud got-ê ez benî |
| Ew şêrê pir hinermend | Îro sê ro bûye zend |
| Marî tev de bûne yek | Kuştin şêrê çavbelek |
| Arîkarî yekîtî | Mûrî kirin rûsipî |
| Ta ko kurd û Kurdistan | Nebin weke mûristan |
| Ne bajar û ne jî gund | Tev de nabin serbilind |
| Ko tune bin mêr û zêr | Emê çawa berin şêr |
| Wawîk û şêr û keftar | Di me bikin tar û mar |
| Bê yekitî em dijîn | Lewra em bûn cegerxwîn |

CEGERXWÎN

xwe, serbendên xwe bi diyariya xelat dike û destûra wan dide. Piştre axa jî tevî xulamên xwe vedigere mal.

MIHEMED CEMÎL PAŞA BIRC

# Kitêbxana Hawarê

Hejmar:

1 — Rêzana Elfabiya Kurdî C. A. Bedir-Xan.
2 — Rupelnine Elfabê C. A. Bedir-Xan.
3 — Dilê Kurên Min Dr. K. A. Bedir-Xan.
4 — Bîyişa Pêxember. Bi Kurdiya dumilî, bi dîbaca C. A. Bedir-Xan
5 — Nivêjên Êzediyan bi dibaca C. A. Bedir-Xan
6 — Mektûb ji Mistefa Kemal paşê re
7 C. A. Bedir-Xan
1 — Mesela Kurdistanê Bazîl Nîkitîn
8 — Ji mesela Kurdistanê. C. A. Bedir-Xan
9 — Elfabeya Kurdî Dr. K. A. Bedir-Xan
10— Xwendina Kurdî Dr. K. A. Bedir-Xan
11— Elfabeya min Dr. K. A. Bedir-Xan
12— Dersên Şerietê Dr. K. A. Bedir-Xan
13— Çarînên Xeyam Dr. K. A. Bedir-Xan
14— Proverbes Kurdes. Medhelokên Kurdî Lucy Paule Margueritte û Emîr. K. A. Bedir-Xan Paris - 1937
15— Le roi du Kurdistan. Qralê Kurdistanê. Emir K. A. Bedir-Xan û Adolphe de Falgerolle. Paris - 1937
6— Der Adler von Kurdistan. Eyloyê Kurdistanê. Prinz K. A Bedir-Xan û Herbert Örtel Berlin - 1937
17— Der Schnee Des Lichtes. Berfa Ronahiyê Şihrên Kurdî Prinz. K. A. Bedir-Xan û Dr. Curt Wunderlich Berlin - 1937

# Kiryariya Hawarê

| | | |
|---|---|---|
| Salî | 500 | Qirûşên Sûrî |
| Şeşmehî | 300 | Qirûşên Sûrî |
| Sêmehî | 200 | Qirûşên Sûrî |

Xwedî û gerînendeyê berpirsiyar: Mîr Celadet Alî Bedir-Xan. Şam—Sûriye
Directeur Propriétaire : Emir Djéladet Aali Bedir-Khan. Damas—Syrie

SAL 10
HEJMAR 40

ŞEMBIH
28 ŞIBAT 1942

ANNEE 10
NUMERO 40

SAMEDI
28 FEVRIER 1942

# HAWAR

## KOVARA KURDÎ ★ REVUE KURDE

TÊXISTIYÊN VÊ HEJMARÉ



★ BIRÊ FRENSIZÎ ★



ŞAM—1942
ÇAPXANA SEBATÊ

SAL 10
HEJMAR 40
ŞEMBIH
28 ŞIBAT 1942

# HAWAR

ANNEE 10
NUMERO 40
SAMEDI
28 FEVRIER 1942

KOVARA KURDÎ ✶ REVUE KURDE

## TEFSÎRA QURANÊ

283 — Heke hon di seferê de ne û katibek nakeve dest bila deyndarê we ji we re gerewekê bide. Lê ger hon ji hev û dû ewle ne û gerew nastînin, divê deyndar ji Xuda bitirse û deynê xwe bide.

Şahid divê tiştên ko dizane veneşêre û bi esehî şehdetiyê bide. Şahidê ko zanîna xwe vedişêre, dilê xwe gunehkar dike. Xuda tiştên ko hon dikin pê dizane.

284 — Her tiştên erd û ezmanan milkê Xuda ne. Tiştên ko di dilê we de ne, heke hon ew vedişêrin an aşikare dikin Xuda pê dizane, û bi we re hisabê wan dike.

Xuda ji kîjkî re dixwaze efîw û toban dide û her kesê ko dixwaze diezibîne. Xwedê bi her tiştî dikare.

285 — Pêxember baweriya xwe bi kitêba ko jê re nazil bûye aniye, misilmanan jî baweriya xwe pê anîne.

Hemî bawermendan baweriya xwe bi Xwedê, bi melaîketên wî, bi kitêbên wî û bi pêxemberên di wî anîne û ew tu ferq naxin di navbera şandiyên Xwedê.

Hemiyan got: Xudanê me, me emrê te bihîst û me tev da bindestiya te kirin û em gî ketine bextê te.

Em hêvîdarên kerema te ne; efîw û tobê bide me; emê vegerin ba te.

286 — Xwedê li tu kesî ji qiweta wî bêtir bar na ke. Barê her kesî li gora taqeta wî ye. Keda her nefsekê jê re ye.

Her kes qencî û neqenciyê ji nefsa xwe re dike; û mêvanê êmelê xwe ye.

Me ji ber guneh û ji bîrkirinên me ber pirsiyar me ke.

Weke ên berî me, tiştine giran li me bar me ke.

Xudanê me, barê me ji taqeta me zêdetir me ke. Gunehên me efîw bike, tobê bide me. Me ji rehm û dilovaniya xwe dûr me ke, me bigihîne xifran û mihrivaniya xwe. Xudan û sermiyanê me tu î, em ketine bextê te, û li ser qewmê kafiran nisretê bide me.

# III

# SUREYÊ MALBATA IMRAN

## DU SED AYET IN, DI MEDÎNÊ DE DAHATIYE.

BI NAVÊ XUDAYÊ PAK Ê DILOVAN Û MIHRIVAN

1 — E. L. M. ji wan herfan miraz çi ye Xuda dizane.

2 — Ji Xwedê pê ve tu Xuda nîne, yê sax û abadîn ew e, ew her hebû, her heye û her dê hebe, çûna wî nîne.

3 — Xwedê ji te re bi delîl û bicetan Quran şandiye xwar û Quran hikmên kitêbên din tesdîq dike. Berî Quranê Tewrat û Incîl nazil bû bûn;

4 — Da ko ew riya rastiyê pêş xelkê bikin. Berî dahatina wan, Xwedê kitêbên din ji şandine xwar, wan ji rastî û xwarî ji hev dikirin. Yên ko ayetên Xwedê inkar kirine û pê kafir bûne ji wan re ezabekî giran heye. Xuda xurt e û tola xwe vedike.

5 — Xuda her tiştên erd û ezmanan dizane, jê tu tişt naye veşartin.

6 — Ew e ko di maka diya we de, li gora daxwaza xwe şiklekî dide we. Ji Xuda pê ve tu Xuda nîne, ê xudanqudret û fêris ew e.

7 — Ew e ko ji te re Quran rêkiriye. Manayê hin ayetên Quranê, kifş in, sehkirina wan hêsanî ye û ew ayetên ha hîmên Quranê ne, hinên din managiran, mana wan zû bi zû nayin sehkirin.

Mirovên dilxwar û fitnekar dikevin pey ayetên managiran û li gora daxwazên xwe mana wan ayetan seh dikin û didin seh-kirin û pê dest bi fitne û fesadiyê dikin.

Ji Xuda pê ve tu kes mana wan ayetên giran nizane û bi awayî li hevanîna manayên wan ne şehreza ye.

Mirovên zana û dilpak dibêjin: Me baweriya xwe bi hemî ayetên Xuda anîne, ew hemî ji wî ne, li serser û li serçavê me ne. Lê bi tenê zelamên bijîr digehin vê rastiyê.

8 — Mirovên zana û dilpak dibêjin: Xudanê me, te em kirin riya rastiyê, êdî, şik û dudiliyê ji me dûr bike, me jê safî bike, me bigihîne piyariya xwe, efiw û tobê bide me. Keremkar tû î û em ji te hêvîdar in.

9 — Xudanê me.... Tu me hemî yan di rojeke ko di hatina wê de tu şik nîne - dê bicivînî. Tu bextê xwe xira nakî.

10 — Divê kafir bizanin... Dewlemendî û zar û zêç, wan ji ezabê Xwedê na filitîne. Ew ardûyên dojehê ne.

11 — Ew baweriya xwe - mîna miletê firewn û qewmên berî wî - bi ayetên Xwedê nayênin, û ayetên Xuda inkar dikin. Xwedê ew êşandin. Xwedê bi ezêbekî giran dieşîne.

12 — Pêxemberê min... bêje wan: Zora we - wê bête birin, honê bikevin dojehê; dojeh çi dereke têrezab e. Dojeh cihê êş û perîşaniyê ye.

13 — Di roja şerê Bedir de gava du bir rastî hev hatin, tiştên ko di wî şer û kuştinê de qewimîne delîl û hicetên pêxemberîtiya Cenabê Mihamed pêş xelkê dikin.

Ji wan du biran yek misilman-êdî kafir bû. Misilmanan di riya Xwedê da dest bi şer û kuştinê kiri bûn.

Herçend misilman hindik bûn, lê hafiran ew ji xwe du cara betir didîtin û misilmanan zora kafiran birin.

Xwedê her kesê ko dixwaze bi nisretâ xwe zexm dike. Di vê de, ji bo mirovên bîrewer ibretine mezin hene.

14 — Jin û hevîn, zar û zêç, bar bi bar zêr û zîv, xweşî û dewlemendî, hespên esîl, keriyên pez û dewaran, çêre û zeviyên fireh tiştine têrxeml in, hejkirina wan şîrîn û dilrevîn xuya dibe, lê ew tişt hemî malê dinyayê ne, dergehê çaktir û bilindtir dergehê Xuda ye.

15 — Pêxemberê min... bêje wan: Ezê ji we re bi tişteki hêj bixêrtir mizgîniyê bidim. Li ba Xwedê ji bo mirovên dilpak û bawermend bihuştine bi av û kanî hene û ew tê de her dimîmîn û di wê de ji bo wan jinên paqij û bedew peyda dibin û rizayê Xuda ê giranbiha digehe wan. Xwedê emelên evd û beniyên xwe dibîne.

16 — Ew in ko dibêjin : Xudanê me, me baweriya xwe bi te aniye, ji gunehên me bigere, tobe bide me û me ji ezabê agirî biparêze.

17 — Yên ko xudansebr in, xudanbext in, itaetkar in, camêr û comerd in û di şagurî de radibin nimêja xwe.

18 — Xuda delilên xwe anîn ko ji Xwedê pê ve tu Xuda nîne.

Milyaket û bawermendên zana jî rabûn bi edaleta wî mikur hatin û gotin : Ji Xuda pê ve tu Xnda nîne, ê delal, ê xudanqudret û fêris ew e.

19 — Dînê heq li ba Xwedê, dînê islamê ye,

Xudankitêb berî di heqê islamiyetê de berberiyê ne kirine; lê gava delîl û hicetên rastiya dînê islamê hate zanîn wan berberiya hev û du kirin û ew ji ber dexsê bi hev ketine.

# HEDÎSÊN

## CENABÊ PÊXEMBER

REHMET Û SILAVÂ XWEDÊ LÊ BE

487 — Xwedê ji xebatkeran hez dike.

488 — Mirovên ko ne xebatker in bi kêrî dinya û axiretê na yin.

489 — Xwedê arikarê xebatkeran e.

490 — Zekat û sedeqeyên xwe bidin peyayên ko ji ber qelsî û nesaxiyê bêçare ketine û nanê xwe ni karin ji keda destê xwe bixwin.

491 — Tu heywan, tu teyr, tu cih, tu roj û tu tişt ne bi çifte ne, yên ko dibêjin ne were ye, derewin in.

492 — Xwarina we hazir be an îşekî we hebe dest bi nimêjê me kin; mirov divê nimêja xwe bi raheti bike.

493 — Yê ko qebahetan kiriye li qisûra xelkê na nêre; yê ko dinya ditiye xelkê nas dike, qedr û xatirê mirovan dizane.

494 — Bi xwarin û vexwarinê zorê li nexweşên xwe me kin, me din ser kêfa wan û me tirsin ko ew ji birçîna dimirin: ( kes ji birçîna na mire. )

495 — Me enirin, me keyidin, nerm bin, bihna xwe fireh bikin.

496 — Ko yeki dest bi kar û îşekî kir heta xelas kirina îşê xwe, qenc be, xerab be tu tiştî me bêjin, û dawiyê qerarekê li ser wî bidin.

497 — Bi ketina hevalê xwe dilxweş me bin, tiştê ko Xwedê anî serê wî dikare bîne serê we ji.

498 — Jin cêrî jî bin li wan me din.

499 — Ji avahiya dûr me çin û li cihên nepenî rûmenin, yê ko lê rûdinin mîna miriyên merzelan in.

500 — Dijûniya li Iblîs me kin, sitariya xwe ji Xwedê bixwazin.

---

Yên ko ayetên Xwedê inkar dikin û pê kafir dibin divê bizanin... Xuda zû diêşîne û zû jî digehîne qenciyê.

---

Ji bona Tefsîra Quranê K.K. û li hejmaêrn 27, 28, 29, 30, 31, 32, 33, 34, 35, 36, 37 38,û39 an fedkirin.

501 — Galgalên neqenc ji miriyan re me bêjin.

502 — Ji kesî re me bin serbar, heke hon siwar in û tajanga we ji destê we ket, hon bi xwe peya bin û wê ji erdê hilînin.

503 — Tirbên miriya ji xwe re me kin ziyaret û mizgeft.

504 — Gava mêvan tên ba we bı tiştên li mal hazir be qedrê wan bigirin.

505 — Xwe dûrî xelkê me girin, ji mirovên xwe bidûr me kevin, dev ji zewacê bermedin, derê nepenî ji xwe re me kin cih û war,

506 — Ji firax û piyan, tas û sêniyên zîv û zêr me xwin û vemexwin.

507 — Tiştên mîna mehûj, behîv û nok yek li pê yekî bavêjin devê xwe, wan tişta bi kulma me xwin.

508 — Misilman xwediyê gotina xwe ne û pê têne nas kirin.

509 — Misilman ew e ko xelk ji dest û zmanê wî ewle ne.

510 — Para hîlekar û bêbextan agir e.

511 — Mirovê ko pereyê wî hehe û deynê xwe ne de bêbext û zalim e.

512 — Xwediyê gotina xwe bibin û arîkariya Xwedê bixwazin.

513 — Şiretker divê bi dilekî pak şîretan bide û bêbextiyê ne ke û galgala hate jê re gotin bila ji devê xwe dernexe.

514 Mirovên pak zû têne xapandin, mirovên xerab xwe vedişêrin, xwe davêjin pişt dîwara; heta derb li wan ne keve.

515 — Jin û mêr mina kevirên bedenekê ne, hev û du himbêz dikin û qiwetê didine hev.

516 — Yê ko xirabiyê dike li saxiya wî xerabî tê pêşiya wî.

517 — Heçi ji Xwedê na tirsin ji xelkê jî fedî na kin.

518 — Mirovê ko bi çavê rehmê li xelkê na nêre Xwedê rehma xwe lê na ke, mirovê ko toba xelkê qebûl ne ke, Xwedê jî toba wî qebûl na ke, mirovê ko di sûçên xelkê na bore, Xwedê jî di gunehên wî na bore.

519 — Heçi ko ji [illegible] kê xeyr û qenciyê dibînin û şikiriya xwe bi wî xelkê na kın, şikirdarê Xwedê jî na bin.

520 — Heçi ko li hemberê dijmina de [illegible] [illegible]ênandina neyara an kuştina xwe çok [illegible] erdê û berê xwe ji dijmina na guhêrin, di gora xwe de na yin êşandin.

521 — Heçî ko bi zar û tewleyê dileyizin li ber Xwedê û pêxember asê dibin.

# ZILAMEK
## Û
# ZIMANEK

Belê heke ew zilamê xurt û bi vên peyda bû zilamek dikare zimanekî jihevdeketî saz bike û carina zimanekî mirî vejîne. Herwekî emê niho bibêjin ew zilam peyda bûye û zimanekî mirî vejandiye û ew xistiye nav zimanên zindî, nav wan zimanên ko mirov pê daxêvin û mexsedên xwe pê eşkere dikin.

Me got zimanên mirî û zimanên zindî. Bêdiro, ji awîrê jiyînbariyê ve ziman jî wek mirovan û wek her heybera rihber dizên, dijîn û dimirin.

Ji zimanên mirî hin hene warkor û kordûnde diçin, di pey xwe re tu tiştî nahêjin; ne kêl ne kitêb. Hinên din di pey xwe re eserine mezin, kitêbine hêja dihêlin û ew kitêb hetanî îro jî têne xwendin. Lê ew ziman bi xwe mirî ne, ji ber ko êdî ew ne zimanê devkî ne û tu kes bi wan napeyive-

Li Ewropayê latinî, li rohelatê nîzing ibranî zimanine mirî bûn. Latinî îro jî zimanekî mirî ye. Lê herçi ibranî êdî ne zmanekî mirî, lêbelê zimanekî zindî ye.

Belê ew mirovê bivên di nav cihiyan de derket û zimanê ibranî vejand. Ibranî zimanekî samî, zimanekî kevnare, hevalê erebiyê ye. Tewrat yek ji çar kitêbên mezin pê hatiye gotin û nivîsandin. Bi tenê zanayan pê dizanîn û di kiniştan de tewrat bi vî zimanî dihate xwendin.

Herçî cihî bi zimanine din, bi zimanên welatên ko tê de rûdiniştin xeber didan. Yanî cihiyan zimanekî milî, zimanekî xweser nîn bû û ji lewre wan bi zimanên xelkê xeber didan.

Di sala 1877an di şerê ûris û tirkî de zora tirkan çû bû û herçî miletên Belqanê hene ji bindestiya tirkan xelas bû bûn. Xe-

laskirina dewletên Belqanê nemaze bi destê çarê ûris çû bû serî û miletê ûris bi xwe bi vî işî beudawar dibû û rojnameyên rûsî gelek qala dewletên Belqanê ên nû dikir.

Di welatê ûris de xortekî cihî bi navê Elyêzer bin Yehûda hebû. Kurê Yehûda wek herkesî bi vî şerî hendewar dibû û didît ko miletên bindest wek Sirbistan û Birxaristanê û ên mayîn ji nîrê zorkerên xwe xelas dibûn û digihaştin ıstiqlalên xwe. Yehûda bi van bûyeran li miliyeta xwe hişyar dibû û li ber halê miletê xwe diket. Yehûda didît ko halê miletê wî ji halê her miletê din xirabtir e. Cihî ne bi tenê bê welat û bê hikûmet in; lê zimanê wan ji nine û bi zimanên xelkê xeber didin.

Xortê cihî qerara xwe da û di dilê xwe de got: divêt cihi vegerin welatê pêşiyên xwe; welatê kurên Israîl, û disan divêt ko cihiyan ji weke xelkê zimanek hebe û têk de pê baxêvin. Ew ziman jî zimanê pêşiyan, zimanê ibranî ye.

Yehûda hînî zimanê xwe bû û di sala 1878an de qesta Parisê, qesta wî bajarê mêvanhewîn kir.

Li Parisê, Elyêzer bin Yehûda têkilî cihiyên Parîsê bû. Elyêzer ji aliki zimanê xwe pêş ve dibir û ji aliyê din fikrên xwe ên millî belav dikirin. Lê welatiyên wî bi xwe lê radibûn û heye ko digotin ev mirov dîn e. Lê Yehûda guh ne dida wan û ji esera xwe a mezin re bi vêneke xurt û mezin û bi serê xwe dixebitî. Yehûda kiri bû serê xwe ji miletê xwe ê bêziman mileteki biziman bîne pê.

Yehûda bi xwe hînî zimanê xwe, hînî ibraniyê bû bû. Niho diviya bû ibraniyê di nav civata miletê xwe de belav bike. Ji bo çandina tovê xwe jê re zeviyek diviya bû. Di sala 1881ê de Elyêzer keça mamosteyê xwe ji xwe re anî û berê xwe da Felestînê. Bi vî awayî jinikek, hîmê xanimanekê, keti bû destê wî. Zaro wê bidana pey. Yehûda, bi rê ve, di vaporê de dersa jina xwe got û hetanî ko gihaştine erdê Felestînê jina wî hînî çend pirsên ibranî bû bû.

Gava pê li erdê pêşiyan kirin Yehûda gote jina xwe, ji niho û pê de emê bi tenê bi ibranî xeber bidin. Ibraniya jinikê gelek hindik bû. Jinikê kir ne kir lê mêrê wê ji qerara xwe ne geriya. Ne hewceyî gotinê ye ko zaroyên Yehûda hetanî ko bûne xort ji ibraniyê pê ve bi tu zimanî ne dizanîn û ji lewre di nav xelkê de lal dihatine hesêb. Lê bi vê laliyê miletê cihî wek miletine din bû xwediyê zimanekî, xwediyê zimanekî xweser.

Yehûda û xelkê mala wî di zîvariyê de dijîn. Lê çi xem. Ji fikirine mezin re fedakarîne mezin divêtin. Ji ber ko xelk bi derbekê bira fikira mezin nabe. Yehûda nanê tisî dixwar lê gava didît ko xelkê mala wî bi ibranî xeber dida, bawer bikin, xwe bextiyartirê mirovên dinyayê dihesiband.

Dawiyê Yehûda rojnameke bi ibranî belav kir û ji xwe re xwendevan ji peyda kirin. Bi rê va û di hin dibistanên cihî de dest bi xwendina ibraniyê jî kirin.

Ji milê din Yehûda ferhenga miletê xwe cêdikir û bêjeyên ko di zimanekî mirî de nîn in ew jî pêk ve tanin. Zimanê ibranî jî di nav cihiyan de belav dibû. Di sala 1922an de gava Elyêzer bin Yehûda mir zimanê ibranî yê ko berî 30-40 salî zimanekî mirî bû, bû bû zimanê miletekî. Ev ziman îro di Felestînê û di rex erebî û ingilîziyê de zimanekî resmî, zimanê dewlet û hikûmetê ye jî.

Kurdino, eve zilamek û zimanek û tiştê ko bi vêna zilamekî têtê pê. Di kar û biserhatiya vî zilamî de pend û derseke mezin heye. Herçî miletên bindest û bêziman an bê zimanê nivîskî divêt jê ibretê bigirin. Herçî em kurd, me ziman, me zimanekî delal heye û em pê daxêvin û piraniya me ji vî zimanî pê ve bi tu zimanî nizanin. Bi tenê divêt em hînî xwendin û nivîsandina zimanê xwe bibin.

Îro hînbûna xwendin û nivîsandina zimanê mader ji bo her miletî êdî ne bi tenê wezîfeke şexsî lê wezîfeke millî ye jî. Heçî bi vê wezîfê ranebûne wezîfa xwe a millî pêk ve ne anine û bi kêrî miletê xwe ne hatine. Ji bona ko mirov bikare xwe ji miletekî bihesibîne divêt bi kêrî wî bêt.

Piştî ko em kurd jî wek miletên din bûne xwediyê elfabeke xweser, xwendin û nivîsandina zimanê me gelek hêsanî bûye. Tecrîbê şanî daye ko li gora jîriya mirov kurd ji heftekê heta çar heftan de dikarin hînî xwendin û nivîsandina zimanê xwe bibin.

Belê piraniya kurdan bi tenê bi zimanê xwe ê mader dizanin û ji lewre li mal be ji derve be bi tenê bi kurdî dipeyivin. Lê di

# NIVÎSEVAN

### NE DI ÇAPXANÊ LÊ DI QADA ŞER DE

Nivîsevanên rojnaman di şerên berê de jî, bi ordiwan re, beta bi nîzingî qada şer diçûn, di qerargahên fermandaran de diman; û ji rojnameyên xwe re, nûçeyên şer bi telegrafê didan zanîn.

Lê di vî şerî de ev xudanqelem derbasî tixûbên xwe ên kevin bûne û nizingî li qadên şer kirine. Ev camêrên ha îro li balafir û cenkeştiyan siwar dibin û digel şerevaniyan xwe didin ber agirê şer.

Yek ji wan, yekî emêrikanî, bi navê Larî Elin, di krewzora ingilîzî « Golte » de bû; gava balafir û noqarên elemanî di avên Qêrewanê de, li Behra-spî, dirêjî wê kirine. Larî Elin biserhatiya xwe bi awayê jêrîn gilî dike :

Nîvê şevê bû. Radyowa krewzorê da zanîn ko talûke nizing bûye. Herçî topçî çûn û li ber topên xwe sekinîn. Ez di kebîna (mezela vaporê) kumandar de nivistî bûm. Nobetdar ez hişyar kirim. Min lez da xwe û xwe gihande hevalê xwe Eleksandr Henderson, mixabirê Roysterê. Me her diwan piştên canxelas bi xwe ve kirin û di tariya şevê de hilkişiyan pira vaporê a jêrîn. Û jê, me berê xwe da pira jorîn. Em hêj ne gihaştî bûn-ê, torpîlek li paşiya krewzorê ket, pêt û rivinî jê belav bûn û krewzor bi hejeke xurt hejiha. Heçko torpîlan da bûn pey me. Gelek ne borî torpîleke din li orta vaporê ket. Qey brûskek li vaporê keti bû. Dor ewçend bi ronî bû bû ko çavên mirov pê kor dibûn. Torpîla sisiyan li pêşiya vaporê di bin birca topên pêşîn re ket. Ji pozê vaporê dûkî stûr û tari rabû. Krewzor gelek êşiya bû, qey dilê wê li hev keti bû; hew dikari bû ji piyan bisekine.

Min da eqlê xwe û dît ko êdî imkan ne ma bû ko ez xwe bigehînim pira jorîn. Ez bi şûn de vegeriyam. Gava, devên topên aliyê çepê berê xwe didan ezmanan, ji aliyê rastê keştyê xwe xwil kiri bû û noqî avê dibû,

Êdî tu wext ne ma bû ko ez winda bikim; min da pişta xwe a kewçûk û ew nepixand. Krewzor li xwe qelibî; ez û çend sed zabit û deryevan em têk de avêtine behrê. Heta hingê Henderson bi min re bû û em bi hev re keti bûn avê.

Lê jê bi şûn de em ji hev bi dûr keti bûn. Carekê bi guhê min ve bû Henderson hin tişt ji zabitekî re digotin. Lê min ew seh ne dikirin; û ji hingê ve min Henderson ne dît.

Herçî ez; ez bi melevaniyê nizanim. Herçî pişta min a kewçûk ez jê ne gelek ewle bûm; tiştekî kevin bû; hebû ko di nav avê de biteqiya. Wê çi li min biqewimiya. Min ew pişt ji balafûlhilgira Ilistriyûs girti bû. Li 10ê Kanûna-paşîn sala 1941, roja ko balafirên elemanî bi ser Ilistriyûsê de girti bûn û ew da bûn ber bimban ez jî tê de bûm. Ez di van texmînan de bûm ko min hew dît ez di nav du diwarên avîn de diqeliqim.

Herçî cenkeştî di nav pêlên behrê de winda dibû û di paş xwe re, li rûyê behrê teweke donê e stûr berdida. Belê krewzor noqî avê dibû û dişewitî. Tirs kete dilê min: Agir biketa cebirxane û depoyên barûtê em di nav behrê de jî dibûn piç û parî. Şikir ji Xwedê re tiştê ko hate bîra min li me ne qewimî. Bi tenê dema ko Golte ji çavan winda bû tiştek tê de teqiya, lê teqîneke sivik; bêî ko zerer bigebe me.

Hetanî ko min xwe careke din li rûyê avê dît min gelek av û don daxwari bû. Min pişta xwe li xwe şidand û li dora xwe fedkirî. Ruyê behrê ji serên mirovan tijî bû-bû. Min celıda xwe dikir da ko ji cihê ko vapor tê de xeriqî bû ez xwe jê bi dûr xim.

Min dît ko çend deryevan hildikişiyan ser mitorbotekê. Min bêz da xwe ko ez jî

---

nav kurdan de hindikahike kiçik heye û xelkê vê hindikahiyê an di welatê xerîbiyê de bûne an îro tê de dijin. Tiştê ko ji vê hindikahiyê re divêt, heke bi zimanê xwe nizanin berî ewilî hînî wî bibin û piştre di nav mala xwe û bi zar û zêçên xwe re herweki Elyêyer dikir bi tenê bi kurdi xeber bidin.

Belê ji van kurdan re divêt, gava ji derve têne mal, herwekî cilên xwe ji xwe dikin û wan bi cilên malê diguhêrînin, zimanê xwe ji welê biguhêrînin û bi zimanê kûçê di nav malê de naxêvin û zimanê malê, zimanê mader wek tişteki miqedes hilînin.

HEROKOL AZÎZAN

xwe bigehînim wan û pê li tiştekî hişk bikim. Bêfêde, ez careke din noqi avê bûm Ewçend av û don çû bûn hundirê min, min digot qey kezeba min wê biteqe. Min deng li dora xwe kir û got: hawar, hawar ....

Min da xwe, û careke din min ceriband ko ez xwe bigehînim filûqê û hilkişim ser. Lê ewçend peya lê siwar bû bûn ko beriya ko ez bigehim-ê, filûqe noqî avê bû û peya ji nû ve ketin behrê. Herçî ez dîsan noqî avê bûm. Gava avê ez ber bi jor hiltavêtim, serê min li tiştekî hişk ket. Ew tişt filûqe bi xwe bû; ez lê siwar bûm û lê rûniştin. Hew min dît filûqe dahat; ez jî pê re. Min dîsan av û dona krewzorê daxwarin. Êdî di min de taqet ne ma bû. Pêlên behrê, bê hemdê min ez dibirim û tanîm.

Avê ez gihandim deryavanên krewzorê. Min ji tevgera wan zanî ko hawara me hatiye; torpiyorên ingilîzî di dora me de ne û li me digerin. Bi tukesî re fanosa elêktirik an tiştekî ronak nîn bû ko cihê me şanî torpiyoran bide. Lê torpiyorekê heta 75 mêtiran nêzingî li me kirî bû. Herkesî berê xwe da bû wê. Min jî da xwe ko ez jî weke wan bikim. Heyhat, pêlêke xurt ez jê bi dûr xistim û ez kişandim binê avê.

Lê nizanim çawan bû, pêleke din ez dam rûyê avê û ez gihandim heta torpiyorê. Pişta min li bedena keştiyê ket. Di şilahiya avê de qirika min ziwa bû bû. Lê dengek jê hat û min kire hawar û gazî. Bi min hesiyan. Dengek ji torpiyorê hat. Wî dengî digot : « Eve ji te re werîsek, vî werîsî di bin çengên xwe re derbas bike û xwe pê girêbide, emê te bikişînin ». Min lê vegerand û got: « Ez nikarim, taqet di min de ne maye ». Di dora min de werîsekî pîs û genî / wek marekî digeriya.

Deryavanên torpiyorê got : « Hinik were pêş emê ji te re pêpelûkeke werîs bavêjin pê re were jor ». û pêpelûk daxistin behrê. Di wê navê de qayixek bi ser min de hat û sê çar caran pozê xwe li min da. Min dida ber qîran û digot : « Kuro hêdî, we ez kuştim ». Ma kengê bi min dihesiyan. Peyayên wê pê li serê min dikirin û hi pêpelûkê re bi hewa diketin, hildikişiyan torpiyorê.

Dawiyê min çengeki xwe di pêpelûkê re derbas kir û ez pê ve zeliqim. Lê min nikarî bû ez bi hewa kevim. Laşê min giran bû bû; dest û lingên min ne diliviyan. Deryavaneki ingilizî bi navê Notî werîsek di stoyê min re gerand, didowên din arîkariya wî kirin, min jî arî wan kir, û nizanim çawan bû; min carekê dît ez li ser pira torpiyorê me. Deryavanan ez girtim û deverû ez berdam erdê, lingên min ber bi jor kirin, milên min dilivandin. Ji dev û difna min ava behrê zêt û dona krewzorê diherikî. Cilên min qederê sê tilî don girtî bûn.

Gava çavê deryavanekî bi bazûbenda min ket bi madekî xweş qîr kir û got : « Eve yekî emêrikanî ».

Ji ber ko nikarî bûn cilên min ji min bikin ew qetandin û ez birim diwanxana xwarinê. Qezazedeyine din ji tê de hebûn; diktor li wan miqate dibû Derziyek li min jî xistin. Qederê deh saetan ez raketî mam, bêî ko ez bikarim xwe têk bidim. Di van deh saetan de torpiyor û bertorpiyor li noqara ko em torpîl kirî bûn geriyan; lê ew peyda ne kirin.

Torpiyora ko ez tê de bûm 100 û yeke din 75 zabit û deryavan xelas kirî bûn. Di Goltê de 580 peya hebûn. Di nav windabûyiyan de kumandarê krewzorê jî hebû.

Gava em gihaştine Iskenderiyê min hêj nikarî bû ez ji piyan bisekinim. Du zabit ketine bin çengên min û ez anîme bejê. Ez vê bendê li otelê û di nav cihan de dinivîsînim.

Herçî Henderson, mixabirê Roycerê, ew jî di nav windabûyiyan de bû. Heyfa wî, zelamekî hêja û mêrekî qenc bû. Gava şerê behrê dest pê dikir Henderson hildikişiya serê pira keştiyê û di nav guleyên vapor û bimbeyên balafiran de disekinî û temaşa şerî dikir.

CEMÎLÊ TACDO

# DÎWANA MELÊ

— 15 —

Bilbilê mecrûhê eşqê taqata xaran nehin
Dê gulava rişê sîne pişkokan bê xarî bit
Her dilê bazîsifet seydê de teyxûnek hebî
Fir-r û perwazê humayê pençeyê şenqal bit
Yar divê hakim bitin qewlê reqîban guh ne kit
Şahê mlkê dilberê dê failek mixtari bit
Da bi zilmê qet ne sojî xenc û xet xalên di hûr
Xeyrixwahên dewletê mîr dê li wan guhdar bit
Teyrê dil bê temhe ki nayête dest şehzadeyan
Quşciyê şahîn di dest wê li pey azarî bit
Bendeyê ba xwey bivê d' meyla sîm û zer ne kit
Da etaya padişahan bê hed û hejmari bit
Sar dibit ma dil bi sed cewr û cefayên zer-reyek
Eşqê tebiet nar e hingî dê biçit dijwarî bit
Leşkerê alem meger yekser te dijmin bin mela
Xem bi mûyek nakişînî ger te dilber yarî bit.

— 16 —

Qelbê me şibih zêr e, ji feyza te cela girt
Ma rûsiyeh û sifresefet rengê sefa girt
Teşbîhî cedawil me di nêv ateşê eşqê
Dili qelbi heqîqet bi te eksîrî huma girt
Salik kî ye hatî ji mecazê bi heqîqet
Sûret ne şinasî û bi mana ne fena girt
Tenha ne li min lamibi bisna te şefeq da
Alem bi xwe wê hisn û cemali di xwe da girt
Teyxûn e di dest de û heye dewlet û iqbal
Herçî te bivê daw di tora xwe huma girt
Canê xwe me kir daneyê dama ko vedayî
Ahûsifet ew pê hesiya rahi xeta girt
Enqa ne şikara kes e dafan tu biçîn ber
Dafa ko tu l' enqa ko vedî badihewa girt
Herkes seherê talibi tiştek bi çimen hat
Hin sosin û hin sinbil û hin zilfê duta girt
Destê me seher girt û birin seyrî hebîbê
Filhal reqîbî ji hesed lerze û ta girt
Ew keb kî xereman ko li kozê li qebo hat
Şahînê qezayê bi texafil ji xwe re girt
Zinhare kesî dest bibit erqemi li ser wê
Bi işweyê lehlan ne bi tilsîmê jiha girt
Sebrê berê şîrîn e û istad xeber da
Lew dil me bi tehlî û xeman xur-rem û şa girt
Her neşter û şokên ko hebîbê me li dil da
Min yek bi yek û têk li derdê xwe şifa girt
Aşiq ji xemê sayeî mey came teleb kir
Pir eqlî didêrid me ji qismê hukema girt
Sef sef ne tenê gezme dibarin ji kevanan
Dil kakilê zilfan ji kemendê bi teba girt
Dîwane herî t-ê ne di vê silsilebendê
Go misteheqî Xusrew û xûban bi ceza girt
Peyweste di fêris ji me re dê berizîn dil
Zilfan bi çep û rast li oxilme cema girt
Qewsê du hilalan ko li ser birci esed bit
Bû şihre di amî ko li enguştê nima girt
Şihra te mela sihri şeker-rîz e bi mûciz
Zanim ji lebê lehlî te ew feyz û eda girt.

# REWŞA DINYAYÊ

ŞERÊ MANŞÊ — Manş ew behr e ko dikeve navbera Frensê û Ingilterê û Etlantikanavin digehîne Behra-bakur. Hin derên Manşê gelek teng in û ew di navbera Giravên Britanyê û Frensê de avtengekê ditînin pê. Cihê wê ê tengtir 34 kîlomêtir e. Di parastina Ingilterê ji êrişa biyaniyan de ehemiyeta Manşê gelek mezin e. Nepolêon piştî ko Ewrope vegirt dikir direjî Ingilterê bike. Nepolêon ji ber vê yekê stolek ji da bû çêkirin Lê plana wî ji ber Manşê, ji ber aveke 34 kîlomêtir dirêj ne çû seri.

Di vî şerî de jî gava balafirên elemanî bi çend htir benzîn diçûn û şev û roj li Londrê dixistin, armanca rastîn bivê nevê vegirtina Ingilterê bû. Lê ev kar ji wan ne hat. Ji ber ko lingê wan digihaşt şilahiyê û nikari bûn li ava Manşê derbas bibin.

Eleman di behrê de kêm bibin jî çend cenkeştiyên wan hene. Ji wan cengeştiyan sisê : Şernhorst, Gneyzênaw û Prins Ögen, ev qederê salekê ye ji benderên elemanî bi dûr ketı bûn û di bendereke frensizî, Brêstê, de diman. Brêst li roavayê bakurê Frensê ye û li ser pozekî ye. Ev poz ber bi Etlantikê ve dirêj dibe.

Balafirên ingilizî di ser Brêstê re difiriyan û her û her li cenkeştiyên elemanî dixistin. Li gora gotina Mister Çorçil ji 4000 t bêtir bimbe avêtine wan. Vegera van keştiyan Elmanyayê işekî zehmet bû; an ewê di Manşê re derbas biwan an derketana Etlantikê û di pişt giravên Ingilterê re xwe bigihandana Behra-bakur û bihatana welatê xwe.

Li 13ê Sibatê emiraliya ingilizî da zanîn ko her sê cenkeştiyên elemanî bi bin himayeta torpiyor û bertorpiyor û balafiran de di Behra Manşê de xuya bûne û stol û balafirên ingilîzî direjî wan kirinê. Şerek di navbera stol û balafiran de çêbû; lê cenkêştiyên elemanî digel hicûma ingilizan di avtengê re derbas bûne û xwe gihandine benderên welatê xwe.

Ji ber ko serdestiya behran di destên ingilizan de ye ev kar ji elemanan re miweфeqiyetek hate hesibandin. Xelkê Ingilterê ji vî işî enirine kasûlî bi aliyê hikûmetê ve dane. Di meclisê de minaqeşêk di vê babetê de

çêbû û Mister Çorçil got ko ne diviya bû ev cenkeştî bi selamet di her peravên Ingilterê re biborin; lê diviya bû ew bihatana bin av kirin. Serekwezîr dibêje; digel vê hindê ev bûyer di lêhê me de ye. Ji ber ko bi vî awayî ev cenkeştî ji Etlentikê bi dûr ketine û ji ber riya vaporqefleyên me rabûne; û ji milê din di benderên elemanî bi xwe de ji me re armancine nû anîne pê. Di dawiyê de Çorçil ji meclisê re da zanîn ko heyetek dê bête teşkil kirin û ev heyet li ser vê meselê wê tehqîqatê çêke da ko bête zanîn heke kasûlî heye û heke heye berpirsiyar kî ne.

ŞERÊ SENGEPORÊ — Di şerê Pesîfikê de yek ji armancên japonan ên bingehîn keleha Sengeporê bû. Me ehemiyeta Sengeporê di hejmarên pêşin de gotî bû. Japonan piştî ko nîvgirava Malêzyayê bi temamî vegirt li .9ê Sibatê esker derêxiste Sengeporê û dirêjî kelehê kir. Ingilîzan gelek li ber xwe da. Şer şeş rojan dom kir û li 15ê Sibatê fermandarê ingilîzî ji fermandarê japonî re da zanîn ko ordiwa ingilîzî dike teslîm bibe û di wê rojê de ew asêgeha giranbeha kete destê japonan û bi vî awayî ji şerê Pesîfikê birê pêşin gihaşte dawiyê.

Ketina Sengeporê, bivê nevê, ingilîzan êşand û di meclisê de di vê babetê de gelek dan û standin çêbû. Mister Çorçil bêî ko ehemiyeta vê bûyerê veşêre, ji meclisê re da zanîn ko ji roja ko stolên emêrikanî û ingilîzî di Pesîfikê de şikestî bûn û serdestiya behrê ketî bû destê japonan qedera Sengeporê xeternak xuya dikir. Ji ber ko Sengepor wargehekî behrî bû û bêî stolê nikari bû, weke xwe, bête midafehe kirin.

Piştî Sengeporê japonan avête ser giravên Cave û Simatrayê; her du giravên Hindistana holendî. Ji çar giravên Hindistana holendî ên bingehîn a meztir û ji awirê eskerî ve biehemiyetir Cave ye. Ji milê din Cave dikeve bakurê roavayê Ewistralyayê jî. Ji xwe qerergaha genêrat Wêvel serfermandarê qewetên sondxwariyan yên Pesîfikê jî li vê giravê ye.

Di pey Sengeporê re japonan berda Simatrayê û bi peraşûtan esker daxistine Palembanê. Bîrên petrolê yên Hindistana holendî di Palembanê de ne. Lê holendiyan beriya ko xwe jê bikişin agir berdan wan bîran û herçî avahiyên wan, berhewa kirine. Japonan bi vaporan jî esker derêxistin beja Simatrayê û van eskeran xwe gihande eskerên ko bi peraşûtan daketine giravê. Şer di navbera japonî û holendiyan de dom dike. Lê şerê mezin di girava Cavê de wê çêbihe. Nifûsa Cavê 42 milyon e û giraniya qewetên holendî di vê giravê de ye. Ji milê din li gora hin nûçeyan ingilîzî û emêrikaniyan ji esker rêkirine Cavayê. Japon bi balafiran li Cavê didin lê hêj ne ceribandine ko esker derînin bejê.

Herçî Ewistralye ye, japonan avête ser wî welatî jî. Balafirên japonî car-car li wargehên giravê didin. Li 19ê mehê japonan esker derêxiste girava Timorê jî. Bi vegirtina Timorê japon çetir nizingi li Ewistralyayê dikin. Ji xwe Ewistralye xwe kar dike. Hikûmeta Ewistralyayê heçî çekhilgir hene banî wan kirine. Wer dixuye ko Emêrike bi xurtî arikariya Ewistralyayê dike. Heye ko hin çek û eskerên emêrikanî gihaştî bin Ewistralyayê. Lê işê Ewistralyayê îşekî zehmet e. Ewistralye welatekî mezin û bêpivan e. Rûyê erdê wê digel Tesmanyayê 7704000 kilomêtir çarçik e; 15 caran bi qasî Frensê mezin. Ji lewre vegirtina wê dişwar e. Pisporên eskerî bawer nakin ko Japonye bikare vî barî jî hilgire.

BÎRMANYE — Piştî ketina Sengeporê japon gelek zorê didin Bîrmanyayê jî: Birmanye du ehemiyetên mezin hene. Berî her tiştî Bîrmanye dev û deriyê Hindistanê ye. Ji milê din riya Bûrmayê, yanî riya ko Çîna nevirgtî digehîne behrê tê re derbas dibe. Ji xwe heke Çîn ev pênc sal in şerê japonan dike xêra vê riyê ye. Çekên emêrîkanî di vê rê û di erdê ingilîzî re digiha Çenkeyşek. Vê paşiyê japonan, piştî ko di Bîrmanyayê de, Merteban jî xistine destên xwe rast bi rast dirêjî Rengûnê, payîtextê Bîrmanyayê û serê riya Bûrmayê kirine. Li gora danezanên 24ê mehê japonan di hin deran de qederê sed kilomêtirî û jê kêmtir jî nizingî li Rengûne kiriye.

Ji ber vê yekê riya Bûrmayê ketiye bin xeterê. Eskerên ingilîzî digel eskerên çînî, yên ko vê paşiyê hatine Bîrmanyayê ji bo parastina Rengûnê gelek li ber xwe didin. Digel vê hindê ingilîz û çînî ji niho de li şûna riya Bûrmayê dest bi çêkirina reke din ki-

riye. Ev rê wê di Kelkûtê re derbas bibe û Behra-hindî wê bigehîne Çinê. Ev rê di ser û di nav newelîne kûr û çiyayine asê re wê derbas bibe. Lê wer dixuye ko di vê nizîngahiyê de rê wê teman bibe. Ji ber ko bi hezeran çînî li ser dixebitin. Çimkî beke riya Bûrmayê kete destê japonan Çîn ji behrê wê qut bibe.

ŞERÊ LÎBYAYÊ — Herwekî xwendevanên me dizanin Romel ji Egêlê li neyarên xwe vegeriya û li 6ê vê mehê gihaştî bû nizingî Xezalê. Li vê derê sekinî û ji bingê ve xwe tev ne da. Herkesî hêvî dikir ko Romel dirêjî Tobriqê jî bike û wê bixwaze ji nû ve xwe bigehîne tixûbên Misrê.

Herwekî Romel xwe tev ne da, ingilizan jî dirêjî wî ne kir Giraniya her du ordiwan ji hev dûr in; bi tenê mifrizeyine mitorkiri carina li hev didin û balafirên her du aliyan benderên hev didin ber bimban Herçî girava Maltê balafirên elemanî û talyanî bê etlahî li wê didin. Li behrê jî şerin çêdibin. Ev şer ji bo binavkirina vaporên hev e. Herçî dewletên mihwerê, ji ber ko di bejê re nagehin Efrîqê çek û eskerên xwe di vaporan de û di riya behrê re ditînin Libyayê.

ŞESÊ ÛRIS — Ev şer rexma berf û baran û sermayê dom dike û wer dixuye ko Zivistan li ûrisan têt. Ji ber ko ûris ji pêşiya Zivistanê ve dev ji êrîşê bernedan. Herçî eleman di hin cihan de xwe ji nû ve didin paş û bi gelemperî şerekî midefihê dikin

Li gora danezanên rûsî ji 20ê vê mehevê ve ûrisan çend bajarên din bi şûn de vegerandine. Lê danezan wan bajaran bi nav nake. Li 23ê mehê danezaneke rûsî dida zanin ko di eniya Smolenskê de eleman rabûne hicûmine xurt, lê ûris ew hicûm sekinandine û eleman bi şûn de vegerandine.

Li 24ê mehê radyowên Mosko û Londrê dane zanîn ko ûris ketine hundirê Xerkovê û ûris û eleman di kûçeyên bajêr de li hev didin.

Disan wan radyowan got ko ûrisan ji Lenîngradê dirêjî xetên elemanî kiriye, ew şkênandine û şer di istihkamên elemanî de dom dike.

Şam : 25 Sibat 1942 NÊREVAN

# BINGEHÊN GRAMÊRA KURDMANCÎ

BI NAVÊ YEZDANÊ PAK Ê DILOVAN Û MIHIRVAN

— 11 —

## PRONAVA BERBIHEVIN

90 — HEV, ÊK.

Pronava berbihevîn ew pronav e ko di qisetê du kesên têvel bi hev re dinimîne û li şûna wan dikeve. Ferqa vê pronayê ji yên din ev e ko pronavên din bi tenê kesekî ( kesê pêşîn, kesê diwim an kesê seyim ) dinimînin. Herçî pronava berbihevîn divêt du kesan an sê kesan bi hev re binimîne; an ji keseki çend peyan. Ev pronava ha tucaran nikare kesekî bi tenê binimîne. Herwekî li jor tête dîtin ev pronav du şikil hene : hev û êk. Şikilê paşîn « êk » bi tenê li nivrorohelelatê Kurdistanê de têtc gotin.

Me got ko ev pronava ha du an sê kesên têvel dinimine. Bêdiro, gava em « em brayên hev in » an « em brayên êk in » dibêj jin pronava berbihevîn; li gora hazirbûna kesan du an sê kesên têvel dinimîne. Heke yên hazir « ez » û peyakî din e « hev » kesê pêşîn û diwim û heke yên hazir ji du kesan bêtir in, hingê « hev » her sê kesên qisetê dikare binimine.

1 — Yên hazir « ez » û peyakî din e. Hingê komeka « Em brayên hev in » mana jêrin dide : Ez brayê te me, tu jî brayê min î ».

2 — Yên hazir « ez » û peyayine din in Hingê komeka « Em brayên hev in » bi awayê jêrîn têtê mana kirin : Ez brayê we me, hon jî ( yanî tu û ew ) brayên min in.

Çend misalên din. Medheloke gotiye : « Kalo ji bêkesî, pirê jî bênefsî her diwan li hev pirsî ». Di vê medhelokê de « hev » ji kesê seyim du mirovan dinimîne : kalo û pirê. Heke me medhelok ji hev de xist mana jêrîn jê bi der têt : Wî ( kalo ) li pirê pirsî; wê « pîrê » ji li kalo pirsî.

Dijminan xar berda hev. Yanî vî aliyî berda wî aliyî û wî aliyî jî berda vî aliyî.

Em du heval in û em ji hev ne razî ne. Yanî ez ji wî ne razî me, ew jî ji min ne razî ye.

## PRONAVÊN LIHEVXISTÎ

91 — Ev pronavên ha herwekî di mada 76an de hate gotin bi lihevxistina hin daçekan bi hin pronavan hatine pê û li gora pêkhatina komekê ev wan daçek û pronavan diniminin Herçî daçek « ji, li, bi, di » ne. Herçî pronav an « vî, vê, wî, wê » ne, an « hev, êk » in. Ji lewre ev pronavên ha du tofan ditînin pê.

92 — Tofa pêşîn jê, lê, pê, tê.

Min jê stand : min ji vî stand, min ji wî stand, min ji vê stand, min ji wê stand.

Ez jê distînim : ez ji vî distînim, ez ji wî distînim, ez ji vê distînim, ez ji wê distînim.

Min lê pirsî : min li vî pirsî, min li wî pirsî, min li vê pirsî, min li wê pirsî.

Ez lê dipirsim : ez li vî dipirsim, ez li wî dipirsim, ez li vê dipirsim, ez li wê dipirsim.

Min pê karî bû : min bi vî karî bû, min bi wî karî bû, min bi vê karî bû, min bi wê karî bû.

Ez pê dikarim : ez bi vî dikarim, ez bi wî dikarin, ez bi vê dikarim, ez bi wê dikarim.

Min tê da : min di vî da, min di wî da, min di vê da, min di wê da.

Ez tê didim : ez di vî didim, ez di wî didim, ez di vê didim, ez di wê didim.

Herwekî ji misalên jorin ve dixuye ev pronavên ha bi tenê yekejmarê dînimînin û nikarin bikevin şûna gelejmarê. Ji lewre li şûna « min ji wan stand » « min jê stand » nayete gotin.

93 — Tofa diwim : jev — jêk, lev — lêk, pev — pêk, tev — têk.

Me jev — jêk stand : me ji hev — êk stand.
Em jev—jêk distînin : em ji hev—êk distînin.
Me lev—lêk pirşî : me li hev—êk pirsî
Em lev—lêk dipirsin : em li hev—êk dipirsin.
Me pev — pêk nikarî bû : me bi hev — êk nikarî bû.
Em pev—pêk- nikarin : em bi hev—êk nikarin.
Me tev—têk da : me di hev—êk da.
Em tev—têk didin : em di hev—êk didin.

( dûmahik heye ) C. A. Bedir-Xan

BIRÊ FRENSIZÎ :

# BAVÊ EMÎN

La chanson que nous présentons aujourd'hui aux lecteurs de Hawar a été transcrite d'un disque Odéon enregistré par la cantatrice kurde Miryam Khanoum, originaire du Botân ( tribu Jêliyân ).

Le poème relate la mort de Ahmad agha, ancien chef des Remân, qui, après avoir passé la majeure partie de sa vie en lutte ouverle contre l'autorité du Sultan, finit par tomber au cours d'un engagement avec les forces gouvernementales. Lors de la disparition d'Ahmad agha, son fils aîné, Amin, était encore trop jeune pour lui succéder. Ce fut donc Perikhân, la femme du défunt qui prit à sa place le commandement de la tribu.

Aussi intelligente et courageuse que jolie, elle continua de mener le combat contre le pouvoir central, avec encore plus d'acharnement que n'avait fait son mari. Elle montait à cheval, portait les armes, et marchait à la tête de ses guerriers, accompagnée de dengbêj ( poetes populaires ) qui chantaient ses exploits. Sa réputation ne tarda pas à éclipser celle d'Ahmad agha, dont les enfants ne furent bientôt plus connus que sous le nom de " fils de Pexikbân " personne n'appela jamais Amin, l'aîné, autrement que Eminê Perîxanê, ce qui d'ailleurs, lui déplaisait fort.

Aprés avoir participé à la révolte de 1925, Amin se réfugia en Syrie avec sa mère. Tous deux rentrèrent en Turquie, lors de la proclamation de l'amnistie de 1928; mais le jeune agha des Remân fut presque aussitôt abattu par des gendarmes turcs. Perikhân mourut quelques années plus tard.

Actuellement, l'aîné des enfants d'Amin se trouve en Syrie, et malgré tout le déplaisir qu'il en éprouve, ses compatriotes continuent à joindre au sien le nom de sa grand-mère (1).

Le cas de Perikhân n'est pas unique dans les annales kurdes. Elles conservent au contraire le souvenir de nombreuses femmes énergiques qui surent prendre en main les destinées de leurs tribus, et dont le rôle politique eut souvent plus qu'une importance locale. L'un des personnages les plus influents du Kurdistan irakien était, durant la dernière guerre, la fameuse Adela Khanoum, avec laquelle nous ont familiarisé les voyageurs anglais.

DIYA FERZO

Lê Dayê . . . . .
Lê dayê, dibê sibe ye, bakî sera w' axao vê sibê li min saa tê.
Dengê top û cebirxana li dora qesra bavê Emîn çarnikar tê.
Derbeka lêdane bavê Emîn, way li min por bikurê w'ezê!
Çardara bavê Emîn girêdane bi şelitê, bi merbetê, bi reqeta mêra ber bi mal tê.
De w'ezê çiqa xiyala xwe didim devê vê birînê, weziro, vê sibê xwîna sar tê.

* * *

Lê Dayê . . . . .
Dibê sibê ye, axao vê sibê, sibê ye, vê sibê bakî sera li mi sar e.
Dengê top û cebirxana li ser singa bavê Emîn, weziro, vê sibê çarnikar e.
Çardara bavê Emîn girêdane bi şelitê; vê sibê bi beraqê tavê re ber bi mal e.
Ferman e, ferman e, axao ferman e.

* * *

Lê Dayê . . . . .
Dibê Dar û kursî xopana koza şewitî Dar û kursî!
Dibê heçî ji wê ve hatî min por bi kura Xwedê vê sibê jê pirsî.
Derbeka lêdane bavê Emîn simbêlê zersosinê
Lê, Xwedê zanê, vê sibê di nav xwînê digevizî.

## TRADUCTION

O ma mère, ô ma mère !
Ce matin, souffle sur nous, ô mon agha, un vent froid qui vient du sérail (2).
Le grondement du canon, le fracas des obus retentissent autour du château du père d'Amin
Ils ont touché le père d'Amin ! Malheur à moi, infortunée aux cheveux coupés court ! (3)
On a lié le père d'Amin sur la civière, avec des cordes et des entraves. Voici son brancard qui s'avance vers la maison, suivi de quelques hommes.
J'ai beau regarder, ce matin, les lèvres de cette blessure, ô mon vizir (4), je ne vois couler qu'un sang glacé !

* * *

O ma mère, ô ma mère !
Ce matin, souffle sur moi, ô mon agha, un vent froid qui vient du sérail.
Ce matin, le grondement du canon, le fracas des obus retentissent tout autour de la poitrine du père d'Amin, ô mon vizir !
On a lié ce matin le père d'Amin sur un brancard, avee des cordes. Le voici qui s'avance vers la maison, aux premières lueurs du soleil !
Nous sommes proscrits, ô mon agha, nous sommes proscrits, proscrits ! (5)

* * *

O ma mère, ô ma mère !
Maudit Dar û Kursi ! Puisse le feu te brûler, Dar û Kursî (6)!
Ce matin, malheureuse aux cheveux coupés court, j'ai interrogé tous ceux qui venaient de là-bas
On m'a répondu : " Ils ont touché le père d'Amin, le guerrier aux moustaches dorées comme les lis.
Sans doute se débat-il au milieu de son sang, ce matin ! "

## NOTES

(1) Il est à noter que beaucoup de filles venues au monde dans les tribus voisines des Remân, à l'époque de Perikhân, ont reçu à leur naissance le nom de cette derniere.

(2) C'est à dire : le gouvernement exerce ses repérsailles contre nous.

(3) En signe de deuil, les femmes se coupent les cheveux et se répandent des cendres sur la tête.

(4) On donne souvent aux bons gueriers les titres de vizir ( ministre ) ou mir ( prince ).

(5) Ferman : décret impérial. En kurde, ce mot s'emploie le plus sonvent dans le sens ee " proscription ".

(6) Nom de lieu. Sans doute celui de l'endroit û se déroula le combat fatal à Ahmad agha.

# Kitêbxana Hawarê.

Hejmar:

1 – Rêzana Elfabiya Kurdî. C. A. Bedir-Xan.
2 — Rupelnine Elfabê C A. Bedir-Xan.
3 — Dilê Kurên Min Dr. K. A. Bedir-Xan.
4 — Bîyişa Pêxember. Bi Kurdiya dumili, bi dibaca C. A. Bedir-Xan
5 — Nivêjên Êzediyan bi dibaca C. A. Bedir-Xan
6 — Mektûb ji Mistefa Kemal paşê re
7 C. A. Bedir-Xan
1 — Mesela Kurdistanê Bazil Nikitîn
8 — Ji mesela Kurdistanê C. A. Bedir-Xan
9 — Elfabeya Kurdî Dr. K. A. Bedir-Xan
10— Xwendina Kurdî Dr. K. A. Bedir-Xan
11— Elfabeya min Dr. K. A. Bedir-Xan
12— Dersên Şerietê Dr. K. A. Bedir-Xan
13— Çarînên Xeyam Dr. K. A Bedir-Xan
14— Proverbes Kurdes. Medhelokên Kurdî Lucy Paule Margueritte û Emîr. K. A. Bedir-Xan Paris - 1937.
15— Le roi du Kurdistan. Qralê Kurdistanê. Emir K. A. Bedir-Xan û Adolphe de Falgerolle. Paris - 1937
6— Der Adler von Kurdistan. Eyloyê Kurdistanê. Prinz K. A Bedir-Xan û Herbert Örtel Berlîn - 1937
17— Der Schnee Des Lichtes. Berfa Ronahiyê Şihrên Kurdi Prinz. K. A. Bedir-Xan û Dr. Curt Wunderlich Berlîn - 1937

# Kiryariya Hawarê

| | | |
|---|---|---|
| Salî | 500 | Qirûşên Sûrî |
| Şeşmehî | 300 | Qirûşên Sûrî |
| Sêmehî | 200 | Qirûşên Sûrî |

**Xwedî û gerînendeyê berpirsiyar: Mîr Celadet Alî Bedir-Xan. Şam—Sûriye**
**Directeur Propriétaire : Emir Djéladet Aali Bedir-Khan. Damas—Syrie**

SAL 10
HEJMAR 41

YEKŞEMB
15 ADAR 1942

# HAWAR

ANNEE 10
NUMERO 41

DIMANCHE
15 MARS 1942

KOVARA KURDÎ ✶ REVUE KURDE

TÊXISTIYÊN VÊ HEJMARÊ



★ BIRÊ FRENSIZÎ ★



ŞAM—1942
ÇAPXANA SEBATÊ

SAL 10
HEJMAR 41

YEKŞEMB
15 ADAR 1942

# HAWAR

ANNEE 10
NUMERO 41

DIMANCHE
15 MARS 1942

KOVARA KURDÎ ✶ REVUE KURDE

## TEFSÎRA QURANÊ

20 Ko Cihî û Filan di heqê dîn de berberiya te kirin; bêje wan: Min xwe û bindestên xwe spart Xwedê. Ji nezanan bipirse: Gelo we baweriya xwe aniye? Heke gotin belê, ew ketin ser riya rastiyê; heke gotin no, bizane ko wacibê te agahkirina wan e. Xuda emelên evdên xwe dibîne.

21 — Yên ko ayetên Xwedê inkar kirine û pê kafir bûne û bê rê pêxemberên Xwedê kuştine û dest bi kuştina şîretkerên riya Xwedê kirine; bila bizanin .... Ji bo wan ezêbekî dijwar heye.

22 — Emelê wan bi kêrî dinya û axiretê naye, halê wan li her du dinyayê xirab e û kes nikare wan ji ezabê Xwedê bifilitîne.

23 — Ma tu wan nabînî... Ew cuhiyên ko, ji kitêba Xwedê xudanbehr in, li ser meselekê li hev nekirin û gava ji bo helkirina wê meselê, li gora kitêba Xwedê, me banî wan kir, birekî ji wan kitêba Xwedê avêtin pişt guhê xwe û jê xwe dane paş.

24 — Ji ber ko wan digot: Agir bi tenê di rojên hejmartî de dest bi me dide û wan bi vê gotina bêesas nefsmezinî dikir û pê nefsa xwe dixapand.

25 — Gelo halê wan çito bibe.... Di wê rojê de ko di hatina wê de tu şik nîne; gava em wan dicivînin û tê de her kes bi kedê xwe berpirsiyar dibe û neheqî nîne û naye kirin.

26 — Pêxemberê min... Bêje: Xudayê min, tu xudanê milkê şahî û dewlemendî yî, tu ji kijkî re dixwazî padişahiyê didî û ji kijikî dixwazî padişahiyê distînî, her kesê ko dixwazî serfiraz û serbilind dikî û her kesê ko dixwazî reben û şermisar dikî, qencî di destê te de ye, tu bi her tiştî dikarî, ê xudanqudret tu î.

27 — Bi fermana te şev digehin rojê û roj digehin şevê, û ew hin kurt û hin dirêj dibin; tu ji miriyan saxan û ji saxan miriyan dertînî. Ji kijkî re dixwazî bê hisab mal û milk didî.[1]

28 — Nabe ko mirovên bawermend dest ji misilmanan berdin û ji xwe re kafiran bikin hevalbend û arîkar.

Yê ko wisa kiriye li gora emrê Xwedê ne meşiyaye; meger ko cih li we teng dibe û hon bi wan re midarayê dikin. Xwedê, emrê xwe pêş we dike û we bi ezabî ditirsîne; guh bidin ê. Dergehê we dergehê Xuda ye. Dergehê we ê paşîn, dergehê Xuda ye.

29 — Bêje; Tiştên ko hon di dilê xwe de vedişêrin an eşkere dikin, Xuda pê dizane. Her tiştên erd û ezmanan jê re xuyanî ne. Xuda bi her tiştî dikare, yê xudanqurdet ew e.

30 — Di roja piştdawiyê de, her kes kedê xwe ê qenc û xirab di ber xwe de wê bibîne û ji xwe re dê bêje: xwezî emelê min ê xirab nîzîkî min ne hata. Xwedê dixwaze ko hon dest ji

[1] Ko Xwedê da napirse tu kurê kê yî.
MEDHELOK

gunehan berdin. Xuda bi evdên xwe re mihrivan û dilnerm e.

31 — Pêxemberê min... Ji Cihî û Filan re bibêje: Heke hon ji Xwedê hez dikin, werin bindestiya min bikin, dako Xwedê jî hejî we bike û di gunehên we bibore. Xuda efiw û toban dide, Xwedê piyar e.

32 — Bêje.... Bindestiya Xwedê û pêxemberê di wî bikin, heke hon xwe jê didin paş, bizanin ko Xuda ji kafiran hez nake.

33 — Xuda Adem, Nûh, Malbata-Ibrahîm û Imran ji bo erd û ezmanan bijartine.

34 — Ew hemî ji çêliyekê ne, ji xwîn û rayekî ne. Xuda dibihîse û Xwedê zana ye.

35 — Bînin bîra xwe.... Jina Imran ji Xudanê xwe re goti bû: Xudayê min, ev zaroyê ko hêj di maka min de ye, min ji te re nezir kiriye, tu wî ji xwe re qebûl bike; ji ber ko tu gotina min dibihîsî û qesda min dizanî.

36 — Gava jina Imranî zaroyê xwe anî û dît ko keçikek e, dilê wê şikiya û got: Xudanê min, min keçikek anî.

Xuda zanî bû çi zaye, ji xwe keçikek ne kurek e.

Jina Imran got: Min navê wê kir Meryem; û min keça xwe û çêliyên di wê, bi te sipart, Xudayê min, wan ji Iblîsê recimkirî bisitirîne.

37 — Xuda Meryem bi awakî delal qebûl kir û wî ew bi xweşî da xweyî kirin û Zekeriya bû bergerê wê. Her cara ko Zekeriya diçû balê, didît ko cem Meryemê zad û fêkî peyda dibûn. Zekeriya jê pirs kir û got: Lê Meryemê, ev zadê ha ji kû tê? Meryemê got ê: Ev zad ji bal Xuda ve ye, ji ber ko Xuda ji her kesî re ko dixwaze rizqekî bêhisab dide.

38 — Zekeriya hema derbasî hundirê mezela xwe bû û got: Xudayê min, ji kerema xwe ji min re zarokekî çak bide, ji ber ko tu diayan dibihîsî.

39 — Ew hêj di mihrabê de disekinî û nimêj dikir ko Cebraîl banî wî kir û got: Xuda ji kerema xwe bi Yehyê mizgîniyê bi te dide, Yehya tesdîqdarê hatina Isa pêxember ji bal Xwedê ve ye. Yehya ji mirovên salih re dê bibe pêxemberk, û wê bibe zelamekî pehrizkar û mezinê miletê xwe.

40 — Zekeriya lê vegerand û got: Ma çawan ji me zarokek çêdibe, ez pir im û jina min stewr e. Cebraîl got ê: Emrê Xwedê ev e; û Xuda her çi jî dixwaze dike.

41 — Zekeriya got: Xudanê min, delîlekî pêş min bike da ko ez bi avisbûna jina xwe bawer bim.

Xuda got ê: ka ji te re delîlek; tu ê sê roj bêdeng bimînî, lal bibî û bi xelkê re bi işaretan bipeyivî.

Navê Xudanê xwe her bîne bîra xwe û şev û roj dest ji kişandina tesbîhê bernede.

# MARŞ

Xortên kurdan tev de rabin, dil şad û xweşî
Em kurên Kurdistan in her bijîn bijî
Her bijî Kurdistan her bêjin bijî
Ev welatek pir şêrin e her bêjin welat
Rêberên xwînfiroş in bo jina welat
Her bijî Kurdistan her bêjin bijî
Serbilindî kes nabînê bê rojên dijwar
Wek şêrên birîndar in bo te ne xwînxwar
Her bijî Kurdistan her bêjin bijî
Roja cengê em tev mêr in şagirtên Rostem
Serbestî doza me ye heroj û her dem
Her bijî Kurdistan her bêjin bijî
Welatê me pir hêja ye terka wî nakin
Ger di vê rê de îro em can fida kin
Her bijî Kurdistan her bêjin bijî.

NAMÎ

# DESTBOSÎ

## JI APÊ MIN NÛREDÎN RE

Ji bo apê min Nûredin dilovan
Hero sed Hatem û Kawis hi heyran
Selavan ez bi gulavê dinosim
Bi lêvên xwe du destên te dibosim
Li Bêrûtê tu mayî yan li Parêz
Min resmê te şev û ro kiriye himbêz
Bi vi dengê xwe ê zîz dinalim
Wekî Ferhad û Mecnûn ez dikalim
Hezar û neh sed û sala çil û yek
Me ji noşî meya işqê peyalek
Min zanî derdeki dijwar giha min
Hemî xort û heval û hogirê min
Bi xwe ez bi ehwalan nizanim
Belê derdê dilê bavê xwe zanim
Çiko rokê min jê re gotî babo
Xeberdanên te ez sotim bes e lo ! . . .
Digotî min kurê min tu nizanî
Ji apê xwe bipirse ew dizanê
Ne ez tenha bi vî derdî birîndar
Hemi lawanê kurdî bûne xwînxwar
Cegersoj in birîndarên evin in
Divên rokê welatê xwe bibînin
Min got derdê we êşek pir xedar e
Bi vê rê de kesê bimrê ne ar e
Meger zahir biçûk im, lê dibînim
Li kovara Hawarê ko dixwînim
Hene tê de kelam û şihrên mewzûn
Gelek bêtir ji apê min Cegerxûn
Ewî masa peyala işqê danî
Bi navê rêberê seydayê Xanî
Kesi wek wî ne noşî mey ji camê
Berî herkes bi şihrê çûye damê
Bi te ey şandiyarê rohelatê
Dikin fexrê bi wî kar û xebatê
Te pir wek min ji xabê kirne hişyar
Eger çerxa felek bo me bibe yar
Bijî apo bi van rojên ciwanî
Bijî dîsa bijî apo tu kanî
Mişo me ez li zanistê me samî
Li te pirsê dikê bavê min Namî

MIŞO

# ÛKRENYE

Di şerê ûris û elmanan de navê Ûkranyayê gelek caran tête gotin. Di vî welatî de şerine mezin çêbûne û iro ji çêdibin. Ji lewre me xwest xwendevanên Hawarê li hin tiştên vî welatî ser wext bikin.

Ûkranye dikeve nivroyê welatê ûris. Rûyê erdê wê 443000 kilomêtir çarçik e. Ji Frensê hinek kêmtir. Ruyê erdê Frensê 551000 kîlomêtir çarçik e. Erdê Ûkranyayê ji nivro digihe heta behra reş. Ji aliyê rohelê tixûbên wê diçin heta Qevqasê. Di aliyê roava de welatên Polonye û Romanyayê hene. Herçî tixûbên bakur bi erdê Rûsya spî dorgirtî ne.

Erdê Ûkranyayê erdeki rast e, tev beristan e, bi tenê aliyê nivro de hin cihên bilind hene.

Çemê Dinyêper di nîvê vî erdi re dibore û welat dike du perçeyên wekhev. Dirêjahiya Dinyêper 2250 kilomêtir e. Çemên wek Birbiyat, Dêsna, Bûg, Donz û Dinyester dikevin Dinyêperî.

Cimhûriyeta Ûkranyayê a sovyêtî bi heşt mintiqe an wilayetan par dibe : Kiyêv, Çernigof, Odêse, Donz, Xerkov, Dinyêpropetrovsk û Moldavye. Kiyêv payitextê Ûkranyayê ye.

Di erdê Ûkranyayê de her texlît maden hene : Xwê, bismût, zeybeq, mengenêz, kufrît, linît, û di mintiqa Donbasê de komira kevir.

Di Ûkranyayê de nemaze komira kevir û hesin zehf in. Di mintiqa çemê Donz de rûyê kanên komira kevir 23000 kîlomêter çarçik e. Di sala 1937an de ji van kanan 71 milyon ton komir hatiye derêxistın.

Di mintiqa Çemê Donbas de kanên hesin gelek dewlemend in. Di sala 1937an de ji van kanan 21 milyon ton hesin derêxistine. Kanên Korskê ji wan ji dewlementir in. Hesinê van kanan bi tenê ji hemî hesi nê dinyayê bêtir e.

Herçi fesfor û mengenêz di Ûkranya rohelat de boş in.

Axa Ûhranyayê, axeke reş e hûr e. Li Ewropayê ji erdê Ûkranyayê çêtir nîne. Di zemanê bolsêvikiyê de cotkariya Ûkranyayê gelek pêş ve çûye. Di sala 1938an de zadê Ûkranyayê ji hemî zadên Elmanye, Polonye û Mecerîstanê du caran bêtir bû.

# JI EZMANAN

HETA BÎNIYA BEHRÊ Û JÊ LI.RÛYÊ ERDÊ

Di vî şerê mezin de bivê nevê tiştine mezin ·û neditî diqewimin. Lê em bi bêtirê wan nahesin. Ji ber ko yên ko ew tişt li wan diqewimîne pericar pê dikevin û dimirin. Lê hinên din heta bi guhên me ve·dibin.

Herweki xwendevanên me dizanin şerê girava Giritê şereki ecêb û xariqilade bû. Elman di ezmanan re dihatin û pê li erdê dikirin. Ingiliz ji bi balafirên xwe derdiketin pêşiya wan û cehda xwe dikirin ko wan bişkêninin û nehîlin ko lingê wan erd bigire.

Elmanan hin esker daxisti bûn balafirgeha Malemiyê. Balafirên ingilizî dihatin û li wê balafirgehê dixistin Di nav wan de balafirvanek hebû bi navê Honor. Honor bera du balafirên elmanî da bûn. Lê balafira wî ji birîndar keti bû û ber bi jêr dibû. Honorê balafirvan dibêje :

— Dijmin bingafti bû baskên balafira min. Min dît ko êdî bê fêde bû. Min ne dikarî ez şerê dijminê xwe bikim. Ji lewre min digot ji min re çêtir e ez jê bi dûr kevim. Lê dijmin dev ji min bernedida û berikên mitralyoza xwe li min dibarandin. Di navbera min û behrê de 200 mêtir ma bûn. Ji nişkekê ve balafira min wek kevireki, bi lez ket û heta çil mêtiri noqî avê bû û tê de rûnişt. Lê ji ber ko derî û pencereyên balafirê qenc girtî bûn av ne kete cihê ko ez lê bûm Min kirasê xwe ê canparêz li xwe kir û di qula balafira xwe re derketim derve. Kirasê min ez anîm rûyê behrê. Behir bi pêl bû. Pêlan ez davêtim çep û rastê. Niho min şerê pêlên behrê dikir. Qederê sê saetan min ajnî kir û ez gehiştim bejê û ketim şikeftekê. Ewçend westiya bûm ko min xwe li erdê şikeftê dirêj kir û heta sibehê tê de nivistim.

Roj li min hilat. Ez rabûm, ji şikeftê derketim. Êdî li zadekî digeriyam. Piştî saetekê gihiştim dêrekê, dêreke vala û bêkes. Di dêrê de, min hinek av û çend darikên kibrîtê peyda kirin.

Wê rojê ez li dêrê beyitîm. Sibetirê min da rê û ez gehiştim şikeftekê. Min tê de hinek nîsk peyda kir. Qey min di emrê xwe de jê tamdartir tiştek ne xwarî bû. Min terka şikeftê ji da û ez ji nû ve bi rê ketim. Ji dûr ve hin dar û şînahiyek xuya dikir. Ez ber pê çûm. Piştî çar saetan ez gihiştim ê.

Ew der gundek bû. Zaro civiyane dora min û ez birim dêrê. Keşe hinek nan û mast daye min. Min ji keşê zanî ko di gund de ingilîzekî din jî heye. Ew jî balefirvan bû û keti bû vî gundî. Ez çi bibînim hevalekî min. Em her du jî bûn mêvanê keşê.

Dilira rojê me ji gundiyan seh kir ko eleman ji gund bi tenê 20 kîlomêtir dûr in Dîsan gundiyan gote me ko elmanan ji gundiyên gundekî din 6 zelam kuşti bûn. Ji ber ko wan tiştên ko elmanan dixwestin ne goti bûn wan.

Gundî bû bûn du bend. Hinekan dixwest ko em xwe bispêrin elmanan, hinên din digot bila bi kêfa xwe bin. Dawiyê her du bend bûne yek û gotine me, hon serbest in. Me jî qerara xwe da ko em ji gund rabin û ji elmanan bi dûr kevin.

Bi şev me terka gund da. Şev tarî û hewa ne xweş bû. Heta bi nîvê şevê em bi rê ve çûn. Em westiya bûn, me bihna xme dida. Ji nişkekê ve dengê balafirekê bi guhê me ve bû. Me digot qey balafireke elmanî ye. Lê gava balafir hinekê din dahat û nizingî li me kir me ji dengê wê zani ko ew ne balafireke dijmin, lê yeke herîkên, halafireke ingilîzî ye.

Fanosa min a elêktrîkî bêj bi min re bû. Min pê işaret dan balafirê. Ewê jî li me vegerand û danî. Em lê siwar bûn û ji erdê Giritê rabûn.

SILÊMANÊ FERHO

---

Di Ûkrânya nîvro de zebeş, gundor û her texlît fêki çêdibin. Titina wan ji heye. Ji sala 1927an ve cotkariyên Ûkranyayê dest bi çandina penbû jî kirine.

Ji milê dın di van salên paşîn de giyayê kewçûkê jî diçînin. Şekirê Ûkranyayê ewçend heye ko têra hemî Rûsyayê dike.

Nifûsa Ûkranyayê 35 milyon e. Bajarên Ûkranyayê ên mezin ev in : Xerkov ( 800 000) Kiyêv ( 650 000 ) Dinyêpropetrovsk ( 300 000 ) Odêse ( 500 000 ) Ertmosk ( 225 000 ) Stalîno ( 290 000 ) Voroşilovgrad ( 100 000 ) Nîkolayef ( 100 000 ) Keson ( 100 000 ).

XELÎLÊ GENCO

# HINDIK RÎNDIK

MELEVANIYA JAPONAN — Li gora nûçeyên ko ji Sengeporê gihaştine rojnameyên ewropayî japonan piştî ko Melêzye vegirtine û gihaştine pêşberê Sengeporê bi her awa û û bi her wasiteyê keleha Sengeporê keşif dikirin. Di vê navê de eskerên japonî bi şev xwe tavêtin behrê û bi melevaniyê li kenala Goherê derbas dibûn û digihaştin peravên Sengeporê û erd keşif dikirin. Dibêjin ko japonan di êrîşa Sengeporê de ji van keşifan gelek istifade kir. Ji ber ko eskeran beriya hicûmê erdê ko lê pê bikira ji berê de nas kiri bû.

HINDISTAN — Hindistan mistemlikeke ingilîzî ye. Lê çi mistemlike, ji Ewropayê bêtir têrnifûs. Ruyê erdê wê1808680 kilomêtir çargoşe û nifûsa wê 375 milyon e. Herçi Ewrope ji Rûsyê pê ve, digel giravên britanî 2084296 kilomêtir çargoşe ye û nifûsa wê 354250000e. Li gora vî hisabî nifûsa Hindistanê ji ya Ewropayê 20 milyon û 750 hezar bêtir e.

PETROLA HINDISTANA HOLENDÎ — Hindistana holendî ji çend giravan pêk ve têt. Erdê van giravan erdekî gelek dewlemend û bi nan e. Bi tenê petrola vî erdî hêjayî milyonan e. Ji vî erdî li salê 7400000 ton petrol bi der têt. Hatin bi vî awayî bi giravan lêk vedibe: Simetre 5000000, Bornêo 1600000, Cave 800000 ton. Herçi Birmanye jê ji qederê 1500000 ton petrol dertêt.

Herçî birên Bornêo û Simatreyê ne ketine destê japonan. Lê holendiyan ew berî ko terka wan bidin şewitandine û berhewa kirine.

ŞER Û MIKAFAT — Di her derê û di her welatî de xelk bi her awayî nav di eskerên xwe didin û wan dihêvojin şer. Herçî kurdmancî, delalê beriyê û lewikê siwaran ev hemî ji şerevaniyan re navtêdan in. Lê herçi emêrikanî bi pere û mikafatan jî nav di eskerên xwe d'din. Şirketeke emerikanî ilan kiriye û gotiye: ji her balefirvanê emêrîkanî re yê ko balafireke dijmin bide erdê; 500 dolar mikafat dê bête dayin.

Mister Lêvî, disa midîrê şirketekê; evî jî mikefetek ji bo deryavanan danî. Mister Lêvî ji her deryavanî re ko cenkeştiya wî di bakurê Etlantikê de noqareke dijmin bixeriqîne, wê 200 dolar bide. Ji milê din Mister Lêvî ji Mister Rûzwelt re 1000 dolar rêkirine. Ev 1000 dolar ji deryevanên wê cenkeştiyê re dê bêne belav kirin ko krewzoreke dijmin, di ser 6000 tonî re, bin av bike.

ÇEKÊN NÛ — Mixabirê « Gazêt de Lozan » ji Londrê dide zanîn. Ingilîzan bimbeke nû çêkirine. Ev bimbe wek balafiran, xwe bi xwe dikeve firê û ber bi armanca xwe ve diçe. Bimbe di şikilê balafiran de ye. Ev bimbe bi baskên xwe difere û gava digehe ser serê armanca xwe baskên wê têne girtin û bimbe bi serî ve û ziçikî dikeve ser armancê û diteqe. Ev bimbe 20 kilo giran e.

ÇAVÊ CAM — Di wextê şerê 1914 û 18an de yekî ji mihafizên tixûbên frensiz û spenyolî bala xwe daye ko di nav rêwingiyan de mirovên kor, yekçav ji adetê der bêtir bûne. Mihafiz ev tişt gote serekê xwe û yek ji wan mirovan girtin û çavê wî ê pipok derêxistin. Di nav çavê pipok de vîtikek hebû; lê bi xeteke zirav hatî bû nivisandin. Kaxez xwendin û zanin ko mêrik casûs e; korên mayin ji hevalên wî ne

PORDARWÎN — Ji destpêka vî şeri ve navê Ewistralyayê her. û her tête gotin. Beriya şerê japonan ji ber eskerê wê navê wê dihate bihîstin. Ji ber ko eskerên wê di her qada şer û di bin bandêra ingilîzan de şer dikin. Piştî şerê japonan jî ji ber midafeha wê gelek qala wê dikin. Japonan nizingî lê kiriye û balafirên wan li bender û wargehên wê didin; nemaze bendera Pordarwîn.

Pordarwîn bajareki gelek kiçik e; heye ko ewistralî bi xwe pê rind nizanin. Pordarwîn merkeza Ewistralya bakûr e û 3000 nifûsa wê heye. Cihekî gelek germ û hewa wê ne xweş e. Lê ji awirê eskiriyê ve Pordarwîn ehemiyeteke mezin heye. Bender û balafirgehên wê gelek bi ehemiyet in û dora bajêr bi xwe asêgeh e. Ji vî 3000 nifûsî bi tenê hezar peya xelkê spî ne; ên mayîn xelkê Ewistralyayê ê kevin in. Rengê van mirovan reşeşin e. Bajar ewçend germ e ko jê re bajarê tilmê dibêjin.

Xelkê bajêr bi piranî nêçira lûlû, gameş û timsaban dikin. Herçî lûlûvan japon in. Îşê wan herçend zehmet be jî kara wan jî ewçend zêde ye. Her lûlûvan di çar mehan de

600 dolar kar dike. Yên ko nêçira gamêşên kûvi dikin salê ji 1000 dolari bêtir kar dikin.

Lê iro di vê benderê de bi hezaran peya gihane hev û çûn û hatin tê de zêde bûye. Ji ber ko dijmin heye ko bixwaze tê re bikeve hundirê welêt.

ŞER WÊ KENGÊ BIQEDE — Me bi xwe bi çavê xwe ne dît, me ji xelkê bajêr bihist Şiforek, ji Şamê diçû Bexdayê. Mêrikê me beriya ko bi rê bikeve depoya timobila xwe ji banzînê dagirti bû; ewçend ko têra riya Dexdayê bike. Lê şifor nizanî bû ko depoya timobîla wî qul e. Mêrik riya xwe hêj bi nivî ne kiri bû ko timobil sekinî. Şifor daket li mitorê fedkiri; kir ne kir, timobîl ne meşiya. Dawiyê iş çi ye zanî û kire hawar û gazî û got: ya Xwedê, ya Mihemed, ya Îsa, ya Mûsa, ya Meryem. Ji nişkekê ve jinikeke bedewi lê peyda bû; cerek li ser milê jinikê ye. Şifor mesela xwe ji jinikê re got. Jinikê got: ka vî ceri bibe û bera depoyê bide. Şifor got: hirmet ma kengê timobîl bi avê meşiyaye; ji min re banzîn divêt. Jinikê gelek li ber şifor da û mêrik cerê jinkê bera depoyê da û timobîl bi rê ket.

Şifor piştî ko çend gavan ji jinikê bi dûr ket gote xwe: heye ko ev hirmet dixwaze here derekê, ka ez jê bipirsim. Şifor lê ziviri, jinikê got: ez naçim tu deran ev der cihê min e. Şifor jê pirsi: Hirmet ma tu kî yî. Jinikê got: ez Meryem im. Şifor çû destê wê û dîsan jê pirsî: Ji kerema xwe ka ji min re bibêje ev şer wê kengê biqede. Meryemê got, di cejna Îsa pêxember de.

Şifor gava ji Bexdayê vegeriya Şamê biserhatiye xwe ji hevalên xwe re got. Hevalên wî gotin ê: Ma te jê ne pirsî kijan cejna Îsa û cejna kijan salê.

Heybat şifor ev ji bîr kiri bûn û ji Meryemê ne pirsî bûn. An ne meê, bi sal û roj û meh, bizaniya ev şerê xedar wê kengê bigehe dawiyê.

XEBERGUHÊZ

# DÎWANA MELÊ

— 17 —

Mehbûb bi dil bît me bi efrazî çi hacet
Enqa bi xwe bêtin fir û perwazî çi hacet
Ne î dûr e hebîbê me ko feryad û fîxan kin
Wî guh li zemîr û dil e, awazî çi hacet
Go sixte mirada xwe ji min telbe ke îro
Min tu kerim î, ji te daxwazî çi hacet
Min nale refîq in xem û tehlî ne misahib
Feryad enîsê min e demsazî çi hacet
Dildan û niwaziş çi ne dişnamî bes in min
Pir derd û cefa hurmet û îzazî çi hacet
Sihbet bi mey û çeng û hebîbê me divêtin
Feryad û fîxan ma ne bes in sazî çi hacet
Razên me çi hacet ko ji xem-maz bizanî
Eşkên me bes in dîdeî xem-mazî çi hacet
Her lehze çi hacet ko bi nazan bikujî min
Cana ji xwe qurbanî te me naz çi hacet
Ta çende bi hicra te tu min tecribe bînî
Zêrê ji xwe xalis mihek û gazê çi hacet
Hacet niye cana yedi beyza biderînî
Inkarî di dîn da nebit îcazî çi hacet
Esrari ezel dê di ebed bêne zihûrê
Encam û serencam ji axazî çi hacet
Ger lûlûyê mensûr ji nezme tu dixwazî
Wer şihrê Melê bîn te bi Şîrazî çi hacet.

— 18 —

Ewil ko yarê da me yek zereyek inayet
Qismet me xemr û came di deftera bidayet
Hisn û cemali canan nadêritin tu payan
Herçî nebit bidayet esla nebin nihayet
Feyza ilûm û hikmet cama sefa ko gêra
Me ji destê mixbeçan dît bi misbef bi ayet
Arif heta ne noşî mey ji destê meyferoş
Xaîb ne bû ji hûşî peyda ne kir wilayet
Gunah û zihd û tamat hilnagirit xerabat
Kesê ko bi vî derdî divê bikit riayet
Eşqê ji her du çeşman ewil dît dil eser kir
Lê zere zere axir sotin kir û sirayet
Şakî silahî herdem bikuştina Melê bît
Gazindiyan ji kê kim, ji kê bikim şikayet
Cama di desti şahid jengê ji dil dişotin
Pîri mixan ji rindan weh weh dikir riwayet
Etwari eşq û mestî esrari pitperestî
Teqrîri sed riwayet nakit ji bo kifayet
Liyitmeinî qelbî eynelyeqîn dibexşit
Eyneleyan divêtin kafî nebin riwayet
Mirî û padişahî mûyek li nik Melayî
Nadim bi milki alem yek zereyî inayet

— 19 —

Er'erxeram e bi qed û qamet
Yek bûse da me bi sed qiyamet
Yek bûse bexşî ewil bi ihsan
Axir li min kir cirm û xeramet

# HEDÎSÊN

## CENABÊ PÊXEMBER

### REHMET Û SILAVA XWEDÊ LÊ BE

522 — Xwedê ji mirovên ko bi cilên ıpehî nefsa xwe mezin dikin dienire.

523 — Şahidê ko şehdatiya xwe ne da, nina şehdetiya zorê ye.

524 — Heçî ko baweriya xwe bi axiretê anîne xelkê aciz na kin, zirara kesî na kin·

525 — Bi zaroyan re li gora aqilê wan bimeşin, bi wan re bileyizin.

526 — Heçî ko baweriya xwe bi Xwedê û bi axiretê anîne arîkariya cîranên xwe dikin.

527 — Porên xwe bişon û bişkinînin.

528 — Heçî ko bext dide miroveki û wî mirovî dikuje, bêbextiyê pê re dike, çavê wî li bihuştê na keve; ew mehvanê agirê dojehê ye.

529 — Heçî ko di nav xelkê de fesadiyê dikın, wan bera hev didin, ne ji me ne, dûrî me ne.

530 — Heçî ko xelkê dixapînin, hîlebaziyê li wan dikin, ne ji me ne, dûrî me ne.

531 — Heçî ko sêwiya dihewinin û wan bi xwedî û mezin dikin para wan bihuşt e.

532 — Heçî ko pis û kêmaqil in, serê wan bê mejî ye tim ezabê xwe dibînin.

533 — Senhetên xwe de pê bidin erdê, wî senhetê xwe me guhêrînin.

534 — Heçî ko roja tengayiyê de mîna şewat û rabûna avê, arikariya xelkê dikin, Xwedê qedrê wan weke mirovên ko di riya wî de hatine kuştin digire.

535 — Xwedê ji mirovên nezan yên ko nezaniya xwe nizanin û li ser rûyê xwe dikevin hez na ke.

536 — Heçî ko bi dilekî rast û pak nefspiçûk in, Xwedê wan mezin dike.

537 — Xwedê ji mirovên ko di civata de xwe dinepixînin, di ser xelkê re rûdinin û bi giranî û qapanî bi rê ve diçin hez na ke.

538 — Heçî ko îş û xebata xwe bi hihufireliyê diqedînin kar dikin, Xwedê poşmaniyê na de wan, lê heçî lez û bezê li xwe dikin meydana wan kin e, zererê dibînin.

539 — Jinên pîr û stewr ji xwe re me yînin.

540 — Li mirovên seqet û nesax bi çavên kirînê me nêrin, dilê wan dimîne.

541 — Kêfxweşiya xwe bi şer û kuştinê me yînin, lê ko hon ketin şerî heta ko zora dijminê xwe bibin û wî bişkînînin pehniya xwe bidin erdê û li cihê xwe giran bin.

542 — Mirina xwe me xwazin.

543 — Gava hon dikin rakevin agirê xwe bitemirînin.

544 — Gava hon li nişanê dixin, heywana me yînin ber nişana xwe.

545 — Yê ko silava xwe na de merhebabûn jê re na be.

546 — Tiştê ko hon jê têşin me xwin.

547 — Bi wî şertê ko mirov wezîfeyên dewlemendiyê pêk bîne, destvekirî be dewlemendî hêja ye û xeml û zîneta Xwediyê xwe ye.

548 — Yê ko ne xwediyê gotina xwe ye û li wada xwe diqulipe ne mirovekî misilman û bawermend e.

549 — Ko pere li cem we peyda ne bû tiştekî me kirin, xwe me kin deyndarê xelkê.

550 — Teneyî ji civata mirovên xerab çêtir e, lê hevaltiya miroveki qenc ji tenahiyê baştir e.

551 — Xwelî li serê wî mirovê be yê ko bi derewa xelkê dikenîne.

552 Navbeyna du mirovan bê destûra wan rûmenin.

553 — Ne li ser ava herikandî û ne ji li ser ava golê me mîzin.

554 — Însan û heywana bi jehr, bi şewitandin û xeniqandinê me kujin.

555 — Jin û zarowa me kujin.

---

**Ji jeng û zirqê dil da bişotin**
**Cama sedef bin rind û keramet**
**Ji her du çeşman tê mest û xunrîz**
**Nûra du çeşman kê di selamet**
**Li derd û êşan pêkan û nîşan**
**Me j' her du çeşman kifş'in elamet**
**Riswayê eşqê tenba ne ez bûm**
**Kes dî zemanan hib bê melamet**
**Du secde ferz in fîlhal bibin ber**
**Dema xuya bit ew qed û qamet**
**Da eybi rindan nekî beyanî**
**Nifûsi qewmî beha tesamet**
**Mela li te emrî bêfêde borî**
**Kêşa bi zoran qehr û nedamet.**

# REWŞA DINYAYÊ

ŞERÊ MANŞÊ — Di hejmara 40î de m qala Manşê kiri bû. Vê carê şer ne di behra Manşê lê di vî aliyê Manşê, li ser erdê Frensizan çêbû. Li yekê vê mehê danezaneke ingilîzî qala vî şerî kir û got ko peraşûtîstên ingilîzî ji balafiran daketine erdekî Frênsa vegirtî, di peravên Manşê de, û dirêjî stasyoneke elemanî kirine. Di vê stasyonê de elemanan balafirên xwe ên xesardîtî tamîr dikirin. Eskerên ingilîzî i êjî vê stasyonê kiriye û ew şikênandiye. Ingilîzan xesarine mezin gihandine elemanan û hin hêsîr jî bi xwe re anine Ingilterê.

Eskerên ingilîzî piştî ko bi karê xwe rebûne xwe gihandine perava Manşê û di bin himayeta topên stolê de, vegeriyane welatê xwe. Xesarên ingilîzî kêm in.

Radyowa Londrê piştî ko qala vê zefera ingilîzî kir digot ko ev hereketeke bi ser xwe bû an ne mexseda ingilîzan ne vekirina enîke nû ye. Radyowa Londrê ev tişt got ji ber ko mesela enîke nû vê paşiyê û dîsan tête gotin. Bêdiro, Litvînof, sefîrê ûrisan li Weşîngtonê di nitqeke xwe de digot ko ji sondxwariyan re divêt di roavê de enîke nû vekin, yanî esker derînin Ewropayê û dirêjî elemanan bikin; da ko barê ûrisan siviktir bibe. Litvînof di nitqa xwe de nemaze tiştên jêrîn gotine :

• Ji bo şikestina qewetên mihwerê divêt em şerê wan di çend eniyan de bikin. Û divêt ev enî ji hev dûr bibin. Tu şek tê de nîne ko Elmanye û Îtalye, li Biharê, xebateke zor wê bixebitin. Me hêvî heye ko dost û hevalbendên me vî halî bir bibin û bi karê ko ji wan re gerek e rabin. Rexma mizeferiyetên ordiwa ûris dijmin hêj xurt e û zora wî ne çûye. Dijmin di paş eniyê re xwe ji bona Biharê kar dike. Ehemiyeta eniya rohelat, eniya ûris mezin e û dawiya şer li gora rewşa vê eniyê wê qerar bigire.

ŞERÊ LÎBYAYÊ — Şerê Lîbyayê weke xwe ye. Eskerên Romel gihaştine dora Xezaleyê û lê sekinîne. Lê ingilîzan jî dirêjî wan ne kir. Çaxê şerê Efrîqayê jî dibore. Dema ko berfên Rûsyayê wê bihelin, qûma Efrîqayê wek kuçên tifikê wê bikele û wê bisincire. Ji lewre divêt ko beriya Nîsanê di Lîbyayê de hereket ji nû ve dest pê bike. Herçî şerê balafiran, her du alî li wargeh û qerargehên hev dixin. Dewletên mihwerê di lêxistina Maltê de pê didin erdê û balafirên wan hero li wargehên giravê didin.

ŞERÊ ROHELATÊ DÛR — Herwekî me di hejmara çilî de gotî bû japonan ji Hindistana holendî piştî Bornêo, Selebis û Simatrayê çavê xwe berda bû girava Cavayê a mezin û balafirên wan bender û wargehên giravê didan ber bimban.

Li 27ê Sibatê de nîzingî Sirabayayê de — bendereke Cavayê — di navbera stolên emêrîkanî, ingilîzî, holendî û japoniyan de şerekî behrî çêbû. Li gora danezanên ingilîzî û emêrîkanî balafirên sondxwariyan stola japonî di nîzingî behra Cavayê de ditî bûn û elam da bûn stolên xwe. Di pey stola japonî re, ji eskaran tejî, çil vaporên barkêş hebûn. Li ser vê xeberê her sê stolên sondxwariyan derketin pêşiya stola japonî û li wê dan. Ev şerê behrî qederê 36 saetan ajot û balafirên her du aliyan jî bi stolan re şer kirin. Stolên sondxwariyan bi mêranî şer kirin û piraniya cenkeştiyên japonî birîn kirin, hinekê wan bin av kirin û ew hemî ji xeta şer bi dûr ketin. Jı aliyê din bimbe û gule li piraniya vaporên eskerî jî ketin û japon bêgav man û ji behra Cavayê baz dan. Di vî şerî de nemaze stola holendî qehremanîke mezin şanî da.

Emêralê vê stolê emir da kumandarên cenkeştiyên xwe ko qeweta dijmin çiqas serdest bibe jî dirêjî wê bikin û heta dawiyê li ber xwe bidin. Wan kumandaran jî welê kir û du krewzorên holandî yên ko di vî şerî de bin av bûne rexma ko behir hilkişiya bû pira wan a jêrîn topên xwe şixulandin û bera dijminê xwe dan.

Sibetirê ejansa emêrîkanî dida zanîn ko japonan esker derêxistine Cavayê û lingê wan di giravê de erd girtiye û japonî û sondxwarî di bejê de li hev didin. Japon derketî bûn sê cihên giravê û dikirin li merkeza giravê, li Betavyayê wer bên. Li gora ejansan li Cavayê ji qewetên ingilîzî, emêrîkanî û ewistralî pê ve 150 000 eskerên holendî bene. Japonan di derba pêşîn de 60000 esker derêxistin Cavayê. Lê hero qewetine nû ditînin. Holendî

û sondxwarî gelek li ber xwe didin. Digel vê hindê êrîşa japonan ber bi pêş diçe û japon dikevin hundirê giravê. Li 5ê Adarê japon ketin Betavyayê. Helanî îro serdestiya behr û ezmanan, di Pesifikê de, di destê japonan de ye û japon bi vê serdestiyê tavêjin her derê. Herçi ingiliz û emerîkanî xwe- kar dikin û li hêviya dora xwe diminin. Û dibêjin ko tiştên ko emêrikanî û ingilizan di Pesîfikê de ji dest dane ev qerekonên wan ên pêş bûn; mina Melêzye, Sengepor û Hindistana holendi. Xelên wan ên bingehin hêj li paş in.

Herçi ingilîz xwe di Hindistanê de kar dikin. Japon li ber deriyê Hindistanê ne; yanî li Birmanyayê ne û dixwazin rojkê berî rojkê îşê Birmanyayê safı bikin. Japonan di Bîrmanyayê de gihaştin riya Bûrmayê û niho zora xwe didine Rengûnê; payitextê vî welatî. Japonan qederê 80 kilomêtir nîzingî li Rengûnê kiri bû û li wê derê sekinî bûn. Ji pencê Aderê ve û ji nû ve dest bi êrişê kirine û li 8ê mehê japon ketine Rengûnê û serê riya Bûrmayê, xistene destê xwe

Herçî emêrikanî wer dixuye ko xwe di Ewistralyayê de kar dikin. Heke japonan piştî Cavayê avête Ewistralyayê heye ko japon di vî welatî de di pêşiya xwe de emêrikaniyan peyda bikin.

Êrîşa japonan, herweki me berê ji goti bû ji bo sondxwariyan nişkegaviyeke mezin bû Sondxwariyan hisabê vî şeri ne keri bû. Mister Çorçil li 26ê Sibatê, di vê babetê de û di meclisê de gotiye: Min hergav hêvi dikir ko Emêrîke şerê dewletên mihwerê wê bike. Lê tucaran ne dihate bira min ko japon ji wê bikeve şer û dirêjî me bike. Ji lewre ez, herçî miletên ingiliz-ziman hene şîretan li wan dikim û dibêjim, sebrê bi xwe bidin û li hêviya encamê biminin. Êrişa japonan di wextekî welê de hate rû ko hingê ji me dixwestin ko em di Frensê an di Holandeyê de enîke nû vekin û ji par re li elemanan bidin.

Piştî ko japonan pê li erdê Cavayê kir, fermandarê ingilizi ê bi nav û deng, general Wêvel yê ko qerargaha xwe danî bû Cavayê, jê rabû û vegeriya Hindistanê, ser wezîfa xwe a pêşin; fermandariya ordiwên Hindistanê. Generalekî holendî ket şûna wî.

Japon beriya ko vegirtina Cavayê temam bikin avêtine ser Gîna-nû ji û li 7ê Adarê esker derêxistine vê girava mezin.

Li 8ê Adarê japonan da zanin ko di Cavayê de eskerên holendi teslim bûne û di wê giravê de şer gihaştiye dawiyê. Radyowa Londorê herçend derew bi aliyê vê nûçeyên ve ne da be ji gotiye ko di rojên paşin de mixabere bi Hindistana holendî re hatiye birin; ji lewre ji Cavayê tu xeber ne gihaştiye Londrê.

Japonan giravên Filipînê hêj bi temamî safî ne kirine; emêrikanî hîn tê de ne û li ber xwe didin.

Bi vegertina Sengapor, Rengûn û Hindistana holendî japon gihaştine Behra hindî. Behra hindi ji bo ingilîzan gelekî bi ehemiyet e. Ji ber ko vapor di vê behrê re tên û dikevin Behra sor û jê dertên Behra spî. Herweki ji navê wê dixuye Hindistan bi vê behrê dorgirti ye. Di nîvroyê Hindistanê de giravek heye jê re Seylan dibêjin. Ev girav xeçereya vê behrê ye; yanî vaporên ko di vê behrê de tên û diçin, komir û pêtrola xwe jê dibin.

Di van rojan de gelek qala Seylanê dikin û dibêjin heye ko japon bavêjin ser Seylanê ji. Ev in dûrahiyên navbera Seylan û benderine din: Rengûn-Seylan 3200 kilomêtir, Sengepor-Seylan 3600 k. Seylan-Besre 6500 k. Seylan-Eden 6150 k. Sengepor-Medegeskar 9700 k. Seylan-Medegeskar 6700 k.

Di vê navê de me qala Medegeskarê ji kir. Medegeskar giravek e û dikeve nîvrohelatê Efrîqayê. Ev girava mezin mistemlikeke frensizî ye. Wê di şerê Behra-hindî de ehemiyeteke mezin heye û di van rojan de di dora wê de kurt û pist zehf bûne. Gotine ko hikûmeta Vişiyê di vê giravê de hin wargehan wê bide Japonyayê. Lê hikûmeta Vişiyê derew bi aliyê vê gotinê ve da.

ŞERÊ ÛRIS — Di hin derên welatê jêrîn de darin bişkivî bin û bihna Biharê dest bi belavbûnê kiri be ji di welatê ûris de hêj Zivîştan e; berf û qeşa pûk û baran e.

Digel vê hindê şer bi xurtîke mezin dom dike. Ji vî milî be ji wî milî, êrîş û berêrîş, hicûm û berhicûm in. Lê teşebis di destê ûrisan de ye. Bihar nîzing bûye. Bi Biharê ve êrîşa elemanan wê dest pê bike. Ûris pê dizanin û ji lewra cehda xwê dikin ko elemanan

bi şûn de, ber bi tixûbên wan ve vegirînin û herçi cihên mihim, ji niho de wan bêxin destê xwe; da ko di dema êrîşê de bikarin li ber wê bisekinin û wê bişkênînin.

Ûrisan di danezanên xwe yên 26 û 27ê Sibatê dane zanîn ko di nîvroyê gola Îlmenê de zora elemanan birine û di wê mintiqê de li ordıwa elemanan a 16an wer hatine. Li gora danezanê di vê mintiqê de 94000 eleman ketine nav çemberê ûrisan; û elemanan di şerê Stereyarûsayê de şikestineke wer pis şikistine ko çek û topên xwe berdane û çavê xwe dane revê; lê ûrisan ew edim kirine.

Li 6ê Adarê ûrisan da zanîn ko eleman di Stereyarosayê de rabûn hicûmê û dil kirine xetên rûsî bişkênînin lê ev hicûm ne çûye serî. Ji milê din ûris dibêjin ko nêzingî li Smolenskê kirine û gıhaştine deriyên Orêlê û Orêl li ber ketinê ye.

Di qada nîvro de jî merêşal Tîmoşenko, li ser eniyeke 400 kîlomêtir fireh rabûye hicûmê û zora elemanan biriye. Di vê eniyê de ûrisan bi 90 firqeyî dirêjî elemanan kiriye.

Şam 14 Adar 1942 NÊREVAN

# CHAHINO

**Les deux fragments qui suivent ont déjà été publiés en kurde dans le numéro 37 de Hawar. Tous deux été recueillis au Botan, l'un dans la région d'Eruh, l'autre chez les Jéliyân.**

## I

Maudit Châhino, tu ne dis rien !
Tu ne fais rien dans la maison de ton père.
Ma dot est forte, où te la procureras-tu?(1)
C'est l'été, le bel été !
Les arbres et les champs de mon père portent leurs fruits.
Les gens disaient : " Ahmad Khan est une fleur. " Je répondais : " Il est la plaie de mon cœur ! "
C'est le printemps. Nos tentes sont parties pour les zozâns (2).
Je construirai pour mon Châhino une cabane avec des roses et des basilics.
Et, si j'en manque, j'en emprunterai chez les voisins.
Mon père n'a que des chevaux pour bêtes de somme.
Ils portent des dattes en haut de leur charge, des cannes a sucre par dessous.
Prévenez Châhin agha de Hochani que l'on a demandé ma main.
Mon père n'a que des mulets pour bêtes de somme.
Ils portent des dattes en haut de leur charge, du sucre par dessous.
Pour l'amour de Dieu, prévenez Châhin agha que l'on m'a prise en mariage.
Maudit Châhino, es-tu fou ? N'es-tu pas fou!
Tu envoies lettre sur lettre.
Ma dot est forte, où iras-tu la chercher ?
Tu possèdes une pouliche grise,
Mais tu n'es pas homme à demander ma main, ni à m'enlever,
Châhino, fils d'agha !
On est en train de tailler les vignes de mon Châhino.
Prends-moi, enlève-moi boute le feu à cette ferme, à cette maison !

## II

Châhino, enlève-moi, nous irons aux zozâns.
Je construirai pour mon Châhino une cabane avec des roses et des pétales de basilic.
Et si j'en manque, j'en emprunterai chez les villageois et les voisins.
Châhino, fou, tu es fou ! Ni tu ne me prends pour femme, ni tu ne m'enlèves.
Ma dot est forte, où iras-tu la chercher ?
Tu ne crains donc pas Dieu pour brandir ainsi le poignard d'argent sur ma poitrine ?
Ma poitrine est un verger plein de roses et de pommes. Lorsque tu es triste,
Viens un instant, tu y chasseras la peine de ton coeur.
La maison de mon père est vaste, une tribu nomade campe en contre-bas.
La nuit dernière, j'ai fait un rêve de bon augure:
J'avais ta pauvre maman pour belle-mère !

TAWÛSPARÊZ

---

(1) Le mot qelen, que nous traduisons par dot désigne la somme que doit verser le jeune homme aux parents de sa fiancée au monent du mariage.
(2) Zozân : pâturage d'été.

# QUELQUES CHANSONS

A part " Koçerê " et " Lo Mîro " les textes que l'on va lire ont été notés au Botan. Le premier d'entre eux, Berdolavî, est une chanson à filer (le mot berdolavi, qui veut dire " devant le rouet " n'est pas le titre de la pièce, mais désigne l'un des genres de la littérature populaire kurde ). Les autres sont des refrains de danse. On remarquera que les vers qui les composent sont uniformément de sept pieds, et que les rimes en sont beaucoup plus régulières que celles des autres chansons. Trois de ces couplets renferment des allusions à des événements historiques qu'il nous a malheureusement été impossible d'identifier : Ce sont Malko ( exécution d'un chef chrétien par un prince kurde )· Amar agha et koçerê ( révolte des Mîrân ). Le dernier, Lo mîro, est une épigramme composée il y a quelques années, sur un de nos amis, par un vieux chanteur.

TAWÛSPARÊZ

Kesek nînin kul û xemê dinê ne di dil de.
Dilê min rebena Xwedê, sitila kuçkirî agir di bin de.
Heke delalê dilê min nas nakî, êvara dimeşit d'nava gun' de.

*
* *

Ezê çûme reza, rêza gula, gula li mi zer kir.
Min û delalê xwe çinîne, li hev di wer kir.
Tilik ji perê dilê mi ma bû kêm.
Eşq û evînî li halê min eser kir.

*
* *

Ezê çûme reza, rêza gula, gula li mî spî kir.
Min û delalê dilê xwe çinîne, henek û yarî kir.
Tilik ji perê dilê mi ma bû kêm.
Minê rojê sê cara, mina heval û hogira, li halê xwe girî kir.

*
* *

Ezê çûme Cizîra Bota, ber de çem e
Xizêma keleşgewra mi zêr û ziv e, çar dirhem e.
Ez, rebenê Xwedê şeva, nîvê şevê, dema henek û yarîka.
Bihnekê rûniştam li cema.

## TRADUCTION

Il n'est personne qui ne porte en son cœur souffrances et peines du monde.
Le mien, pauvrette, est un vase qui bout sur les chenets, le feu brûle en dessous.
Si tu ne sais quel est celui que j'aime; il se pavane le soir au milieu du village !

*
* *

Je suis allée à la vigne. Des haies de roses !
Leur vue m'attriste.
Le bien-aimé et moi, nous les avons cueillies, pour nous battre avec.
Il restait de mon coeur moins large qu'un doigt,
Tant l'amour me troublait.

*
* *

Je suis allée à la vigne — Des haies de roses !
Leur vue me rend joyeuse.
Le bien-aimé et moi, nous les avons cueillies; nous avons badiné, joué.
Il restait de mon cœur moins large qu'un doigt.
Trois fois le jour, je me lamente, comme font mes compagnes

*
* *

— Je suis allé à Djezir de Botan, au bord de la rivière.
Le bijou que ma belle porte à la narine est d'or et d'argent, il pèse quatre drachmes.
Hélas ! Que ne puis-je, à minuit, l'heure des jeux d'amour, rester un peu chez elle !

## MELKO

Melko xwestî dîwanê.
Sê fîncan qehwe danê.
Paşê, celad berdanê.
Melko go : " Ez melko me ! "
Şêro go : " Ez Melko me,
Xweyê şwîrê bi co me,
Kilê çavê Silto me ! "

On fit venir Malko au divan.
On lui donna trois tasses de café,
Puis on le livra au bourreau.
Malko dit : " Je suis Malko ! "
Le lion dit : " Je suis Malko ,

Je possède un sabre à nervure,
Je suis le kohol des yeux de Selto ! "(1)

## EMER AXA

Emer axa axa ye,
Şêrê Soro axa ye.
Şwirê misri kêşaye,
Nav eşira xwe daye.

Amar agha est un chef,
Il est le lion de Soro agha.
Il a tiré son sabre d'Egypte,
Et chargé sa propre tribu.

## MÊRG

Mêrga pişta malano,
Çi mêrgeke heşin e !
Keç'ko d'rêsin teşêko,
Xirxiro wê jê têno.
Dostika min esmer e,
Esmer, şêrin esmer e !

La prairie derrière les tentes,
Comme elle est verte !
Les filles y font fourner leurs quenouilles
Que l'on entend ronfler.
Ma mie est brune,
Brune ! C'est une douce bruna !

## KOÇERÊ

Kesera mêrê berê,
Koçerê cer li mil kir,
Qesda kanika gir kir.
Cer qul bû, taqî şil bû.
Dilê lawik bikul kir
Koçer ji malê Mira,
Reş'kandin bendê şêra.
Ez te nadim b' tu eşira;
Koçer ji malê Bota.
Raş'kandin bendê cota.
De lê û lé, koçerê,
Pozqulê, xizêm zerê;
Kesera mêrê berê !

Tourment des braves (2)
La nomade avait pris sa jarre sur l'épaule
Et s'en allait vers la source du coteau.
La jarre était fêlée la robe était mouillée.
La belle a blessé le coeur des garçons.
Les nomades des tentes Mirân
Ont brisé leurs chaînes comme des lions (3).
Je ne te donnerai pour aucune autre fille de tribu.
Les nomades des tentes de Botan
Ont brisé leurs entraves comme des beufs .
Tralala ! Ma nomade,
Aux narines percées, au khezém d'or(4),
Tourment des braves.

## LO MÎRO

Lo miro, lolo miro !
Ro dihate nimêja niro.
Oda mirê min b'soring e,
Heçî dosta wi firenge;
Emrê wi emrê quling e.
Lo miro, lolo miro !
Ro dihate n'mêja niro.
Oda mîrê min b' hene ye,
Heçî dosta wî file ye,
Emrê wi j'emra zêde ye.

Emir, émir !
Voici l'heure de la prièrede midi.
La chambre de mon émir est de couleur pourpre
Toutes ses bonnes amies sont d'Europe.
Il a vécu moins longtemps qu'une grue(5).
Emir, émir !
Voici l'heure de la prière de midi.
La chambre de mon émir est couleur de henné.
Toutes ses bonnes amies sont chrétiènnes.
Il a vécu plus longtemps que quiconque.

---

(1) C'est à dire : Je suis le bien-aimé de Selto.

(2) Mêrê berê, homme de jadis, a le sens de brave.

(3) Les Mirân sont une tribu nomade du Botan. Ces deux vers renferment sans doute une allusion à une de leurs révolte ( Celle de Brâhim agha contre son suzerain, l'Emir de Botan vers 1830 ? )

(4) Khezém : bijou que les femmes portent dans la narine gauche.

(5) La croyance populaire veut que la grne ait une vie très courte.

# Kitêbxana Hawarê

Hejmar:

1 — Rêzana Elfabiya Kurdî C. A. Bedir-Xan.
2 — Rupelnine Elfabê C. A. Bedir-Xan.
3 — Dilê Kurên Min Dr. K. A. Bedir-Xan.
4 — Bîyişa Pêxember. Bi Kurdiya dumilî, bi dîbaca C. A. Bedir-Xan
5 — Nivêjên Êzediyan bi dibaca C. A. Bedir-Xan
6 — Mektûb ji Mistefa Kemal paşê re
7 . C. A. Bedir-Xan
1 — Mesela Kurdistanê Bazîl Nîkitîn
8 — Ji mesela Kurdistanê C. A. Bedir-Xan
9 — Elfabeya Kurdî Dr. K. A. Bedir-Xan
10— Xwendina Kurdî Dr. K. A. Bedir-Xan
11— Elfabeya min Dr. K. A. Bedir-Xan
12— Dersên Şerietê Dr. K. A. Bedir-Xan
13— Çarînên Xeyam Dr. K. A. Bedir-Xan
14— Proverbes Kurdes. Medhelokên Kurdî Lucy Paule Margueritte û Emîr. K. A. Bedir-Xan Paris - 1937
15— Le roi du Kurdistan. Qralê Kurdistanê. Emir K. A. Bedir-Xan û Adolphe de Falgerolle. Paris - 1937
6— Der Adler von Kurdistan. Eyloyê Kurdistanê. Prinz K. A Bedir-Xan û Herbert Örtel Berlîn - 1937
17 — Der Schnee Des Lichtes. Berfa Ronahiyê Şihrên Kurdî Prinz. K. A. Bedir-Xan û Dr. Curt Wunderlich Berlîn - 1937

# Kiryariya Hawarê

| | | |
|---|---|---|
| Salî | 500 | Qirûşên Sûrî |
| Şeşmehî | 300 | Qirûşên Sûrî |
| Sêmehî | 200 | Qirûşên Sûrî |

Xwedî û gerînendeyê berpirsiyar: Mîr Celadet Alî Bedir-Xan. Şam—Sûriye
Directeur Propriétaire : Emir Djéladet Aali Bedir-Khan. Damas—Syrie

SAL 10
HEJMAR 42

ÇARŞEMB
15 NÎSAN 1942

# HAWAR

ANNEE 10
NUMERO 42

MERCREDI
15 AVRIL 1942

## KOVARA KURDÎ ★ REVUE KURDE

TÊXISTIYÊN VÊ HEJMARÊ



ŞAM—1942
ÇAPXANA SEBATÊ

SAL 10
HEJMAR 42
ÇARŞEMB
15 NÎSAN 1942

# HAWAR

ANNEE 10
NUMERO 42
MERCREDI
15 AVRIL 1942

KOVARA KURDÎ ✶ REVUE KURDE

## TEFSÎRA QURANÊ

42 — Wê demê bînin bira xwe.... Cebraîl ji Meryemê re got: Lê Meryemê, Xuda tu bijartiye û ji gunehan paqij kiriye. Xwedê tu ji hemî jinên dinyayê çêtir girtiye.

43 — Lê Meryemê.... Ji Xudayê xwe re bindestiyê bike, guhdarî emrên wî bibe û bi nimêjkeran re secde bibe Xudayê xwe û xwe lê bitewînê.

44 — Pêxemberê min.... Qiseyên Meryem, Zekeriya, Yehya û îsa tiştîne xeybê ne; emê ji kerema xwe wan tiştan bi te didin zanîn; herwekî gava ji bo bijartina bergerê Meryemê, bîst û heft mirîdên Dergehî, qelemên xwe avêtin avê û gava ew li hev kelin, tu ne li cem wan bûyî û pê ni zanî.

45 — Wê demê bînin bira xwe... Cebraîl got: Lê Meryemê, Xuda bi pirsekê mizgîniya kurekî bi te dide, navê wî Mesîh Îsa kurê Meryemê 'ye. Qedrê wî, di dinya û axiretê de wê mezin bibe; ew yek ji yên nizîkî Xuda ye.

46 — Ewê hêj di landika xwe de, bi xelkê re wê baxêve û di mezinahiya xwe de jî bi wan re dê bipeyive.

Ew ji dilpakan e.

47 — Meryemê got: Xudayê min, tu mêr nîzîkî min ne bûye, çawan ji min zarokek çêdibe. Cebraîl got ê: Emrê Xwedê ev e, Xuda her kesê ko dixwaze dixuliqîne. Ji xwe gava Xwedê bi çêbûna tiştekî mirad dike, ji wî tiştî re dibêje: Bibe, û ew tişt çêdibe.

48 — Xwedê jê re kitêb û hikmetê û Tewrat û Încîlê dê bide zanîn

49 — Xuda Isa ji lawên Israîl re bi pêxemberîtiyê dê bişîne û Isa ji wan re dê bibêje: Ez ji bal Xuda ve, bi ayet û delîlan hatime nik we. Lawên Israîl wê jê bipirsin û bibêjin; Delîlên te çi ne. Îsa ji wan re dê vegerîne û wê bibêje: Ezê ji ax û heriyê ji we re teyrekî çêkim û jê re bi kerema Xwedê can bidim, ezê yên ko ji diya xwe kor bûne, sax bikim; çavên wan dê vebin; û nexweşên baweşînê bigehînim saxiyê û bi destûra Xwedê miriyan vejînim; û herçend ji min tiştên ko hon dixwin û mala xwe de kom dikin ne dîtine, ezê navê wan bi we bidim zanîn. Ev delîl û hicetên pêxemberîtiya Isa ên hêja ne; heke we baweriya xwe pê aniye?!

50 — Isa wê bibêje: Ez tesdîqdarê kitêba we Tewratê me û tiştên ko ji we re hate heram kirin, ezê wan ji we re dîsa helal bikim û ez ji we re bi ayetên Xuda têm, ji Xwedê tirsiyar bibin û bindestiya min bikin.

51 — Ji ber ko Xuda, Xudayê min û we ye, jê re taet û ibadetê bikin, riya rast ev e; û riya rast, riya Xwedê ye.

52 — Gava Îsa bi kafiriya cihiyan hesiya, pirsî û got: Di riya Xwedê da, heval û arîkarên min kî ne? Hewariyan lê vegerand û got: Em di riya Xwedê de arîkar û destbrayên te ne, me baweriya xwe bi Xwedê aniye û tu bibe şahidê me ko em misilman in.

53 — Xudayê me, me baweriya xwe bi Incîla ko te şandiye xwar aniye û bindestiya pêxemberê te kiriye, me ji şahidên mezinahiya xwe bihesibîne.

54 — Cihî di heqê Îsa pêxember de, dest bi bêbextiyê kirin. Xuda jî di heqê

cihiyan de welê kir. Xuda di her tiştî de, ji her kesî xurtir e.

55 — Bîne bîra xwe... Xwedê, ji Îsa re got: Pêxemberê min, ezê te binivînînim û piştre te bal ezmanan, cihê melyaketan ve hilînim û ezê te ji dijminên te pak û safî bikim. Ezê tabiên te, di axiretê de li ser kafiran serfiraz û cihbilind bikim. Di roja pişdawiyê de kafir wê bên pêşiya min, û wê bikevin hafa min, û li ser tiştê ko we bi hev ne dikir, ezê pirsa xwe a paşîn bibêjim û hikmê xwe bidim.

56 — Ezê kafiran di dinya û axiretê de bi ezabekî giran biêşînim; kes nikare tê de arikariya wan bike.

57 — Lê yên ko misilman bûne û tiştine qenc lihev anîne, emê wan bigihînin kerem û comerdiya xwe. Xuda ji ẍedaran hez na ke.

58 — Em bi wehî û ayetên xwe ji tê re tiştên hêja û hikmetdar didin zanîn.

59 — Zayîna Îsa, li ba Xwedê weke afirandina Adem -e; Xuda Adem ji axê da afirandin û jê re got: Bibe û ew çêbû.

60 — Herçî ko ji bal Xuda ve ye, bêşik rast e, duditiyê me ke.

61 — Piştî hatina delîl û hicetên pêxemberîtiya Îsa, heke dîsa hinan berberiya te kir, bêje wan: Gelî mirovino.... Werin, em banî jinên me û we, zaroyên me û we, nefsên me û we bikin û piştre niyazmendên Xuda bibin û ji bona derewkeran dest bi xwestina laneta Xuda bikin. Yên ko pêxemberîtiya Îsa inkar dikin, divê bikevin laneta Xwedê.

62 — Ev qiseyên hanî, qiseyên rast in. Ji Xuda pê ve, tu Xuda nîne, ji Xwedê pê ve delal, fêris û xudanqudret tu kes nîne.

63 — Heke wan ji qebûlkirina rastiyê xwe dane paş, bila bizanin, Xuda mifsidan nas dike.

64 — Pêxemberê min..., Ji Cihî û Filan re bêje: Xudankitêbino..... Werin emê li ser qiseya ko, di heqê wê de, gotina kitêb û pêxemberên Xuda yek e li hev bên û em bibêjin: Em yekîtiya Xwedê dizanin, ji Xuda pê ve ji tu kesî re ibadetê na kin, tu kesî na kin hevrî û hempayê wî, ji wî pê ve tu kesî na hesibînin mezin û sermiyanê xwe. Pêxemberê min.... heke wan xwe jê dane paş, bêje wan: Hon bibin şahidê me ko me baweriya xwe bi yekîtiya Xwedê aniye, û em misilman in.

65 — Gelî xudankitêbino.... Cihî dibêjin, Ibrahîm ji me ye; file jî dibêjin, no ew ji me ye; çire hon wisa bêrberiya hev û du dikin, ma hon bîr na bin ko Tewrat û Incîl, ji we re piştî wî hate rêkirin.

66 — Hon çi milet in... Bi tiştê ko hon esl û rastiya wî dizanin qaîl na bin û baweriya xwe pê na yênin, zidê wî dimeşin; û bi tiştê ko nizanin berberiya hev û du dikin. Xuda pê dizane, lê hon pê ni zanin.

67 — Ibrahîm ne cihî, ne jî file, lê misilmanekî pak û dilrast bû û ne ji koma kafiran bû.

68 — Nîzîkên Ibrahîm ew in ko li ser şopa wî çûne; û ew jî pêxember û mirovên bawermend in.

Xuda xwedî û arîkarê bawermendan e.

# AWAYÊ EVÎNÊ

Ma dizanî aşiqan dilber xiyala şev û roj
Wer dinalin xwîn dimalin ew ji çavan şev û roj
Dılgirên dama evînê, wan j'nêdî ve gotiye
Guft û goyên zilf û xalan dane zanin şev û roj
Me b'tenê dilber divaye, yara bê ten û gihan
Ew sirişta zende gaye landika me şev û roj
Bihuşt û zenda gihane wê di cihan daye deng
Wê ji me sed dil rewa ye em li bendê şev û roj
Qenc û naz e, tengudaz e, padişahek bê wefa
Her dema bersef dixwaze mînekar im şev û roj
Berfa yarê ji xuyîna me nivîsî xêzexşz
Soz û peyman me dida wê olperest im şev û roj
Karê maşûqan wiha ye, aşiqan erzan didin
Wan bi xişmê dil hewa ye xwîn dirêjin şev û roj
Sorgula bilbil divaye xişmê seywan lê veda
Ma li ser lat û zinaran tım şiyar e şev û roj.

HIŞYAR

# HEDÎSÊN

## CENABÊ PÊXEMBER

### REHMET Û SILAVA XWEDÊ LÊ BE

556 — Nezir û qurbana me kin, ko filan işê min çêbû ji filan pêxember û ewliya re qurbanekê şerjê bikin me bêjin.

557 — Di şîna xwe de ax û zarina û qir û wîra me kin.

558 — Heçî ko her ji koçeriyê hez dikin dibin hovê serê çiya, yên ko her bi seyd û nêçîrê mijûl dibin ji kar û işê xwe xafil dibin û bi şûnda dimînin, mirovên ko her li pey mezinên dewletê digerin fitnekar dibin.

559 — Heçî bêsebeb xaniyê xwe difiroşin ji wan peran xêr na bînin.

560 — Xwedê li mirovên ko gava tiştekî difiroşin xerabî û kêmaniya wî na bêjin tê xezebê.

561 — Heçî ko xaniyê xwe difiroşin û bi pereyê xaniyê xwe xaniyekî nastinin xeyr û bereketa wan peran nabînin.

562 — Heçî ko bihna rûn û goşt ji destê wan tê û bê destşiştin radikevin û pê nesax dibin divê bizanin ko ew sûcdarê nefsa xwe ne.

563 — Yê ko xurtî û çavsoriyê li xelkê dike û bê heq malê wan dixwe ne ji me ye.

564 — Wextê ko hon sîr û pivazê dixwin gerek hon ne yin civatê camêra.

565 — Heçî ko bê destûra xwediyê wan kaxez û deferên xelkê ji hev dixe û li hundirê xaniyê wan dinêre û saxiya xaniyên wan dike, divê bizanin ko xirabî û heramiyê dikin, heqê wan ew e çavê wan bê rijandin.

566 — Yê ko malê diziyê dikire bi diz re gunehkar dibe.

567 — Yê ko nîşanvan e û dev jê berdide û avêtina tifing û nişanê ji bîr dike ji nîmeta ko Xwedê da bû wî mehrûm dibe.

568 — Tiştê ko sinet û Quran tê tu ne be înaniya xwe pê meinin û pê emel me kin.

569 — Heçî ko dixwazin xelk li ber wan rabe piya, bila hisabê rûniştina xwe li agirê dojehê bikin.

570 — Heçî ko bêsebeb û bêheq mirovên nemisilman diêşin'n ez neyarê wan im û ez li axiretê dawadarê wan dibim.

571 — Heçî ko bê sebeb û bê heq xelkê diêşînin Xwedê ji xwe dixeyidînin.

572 — Bêbextiya mezinûtir ew e ko mezinê welatekî bi zad û xwarina xelkê ji xwe re ticariyê dike.

573 — Li Inc'lê hatiye nivişandin : wek te bi wan kiriye wê bi serê te ji bê; wek te bi wan dikî ew jî wê bi te bikin.

574 — Ji bona mirovên ko qenciyê dikin masiyên behra ji dia dikin.

575 — Heçî dar û xerza dişitilînin û erd û cotê xwe dikin Xwedê qedrê wan digire.

576 — Yê ko dielime tiştekî û bi xelkê na de zanin kirin, mîna mirovek e yê ko zêrên xwe vedişêre, dike bin erdê û pê arikariya xelkê na ke.

577 — Mirovê ko şireta qenciyê li xelkê dike û ew bi xwe qenciyê na ke mina çirayek e ko dora xwe reş dike û ronahî dide xelkê.

578 — Heçî ko dilê wan di dana deynê wan hebe Xwedê arikariya wan dike.

579 — Ji qenciyê hêjatir tiştek tune, qenciker mina mirovek e ko her nimêja xwe dike û rojiya xwe digire.

580 — Li ba Xwedê sedeqa mezin ew e ko mirov rastiyê bibêje.

581 — Mezin hemî pîgirêdayî wê bên hafa Xwedê, emelê wan ên qenc wan ji pîgirêdanê xelas bikin.

582 — Yê ko di roja tengahiyê de bi kêrî hevalê xwe ne hat ko ew ket tengasiyê kes ji bi kêrî wî na ye, xwedîtiyê lê nake.

583 — Mirovê ko deriyê xwe digire li ber xizan û belengaza, Xwedê deriyê rehm û keremê lê digire.

584 — Xwedê mezinê miletê ko li ser rast ne meşiyaye ber bi rû ve davêje dojehê.

585 — Tu dilê bê xem tune ye.

586 — Sebir, baldirêjî û bihnfirehî zînet mirova ye.

587 — Xwedê di gunehên tobedaran dibore.

588 — Tirsê tu kesî ji mirinê xelas ne kiriye, feyda tirsê tune ye.

589 — Du gur hinde hakimekî zalim keriyî na êşinin.

590 — Tu hinde xebata xulamê xwe sivik dikî bi wî qasî Xwedê sewaba te bêtir dike.

591 — Wesiyetê xwe binivîsînin û li cem xwe hilînin.

592 — Yên ko qedrê kal û piçûk û zaroyên me na girin ne ji me ne.

593 — Yê ko gava ciranê wî birçî ye, zikê xwe dadigire û li ciranê xwe na pirse ne camêr e.

# NEWRÛZ

## BİST Û SISEYÊ NISANÊ

Herçi Kurdistan, nemaze welatê jorin dîtine, qenc bir dibin ko ev cejna mezin, cejna me a mili û nijadin, Newrûz, ji tebieta welatê me bi xwe hatiye der; şertên jiyîna welatê me ew xwestiye.

Belê herçî welatê kurdan û Zivistana wê dîtine û tê de jiyiyane rind dizanin ko Zivistana wî welatî heyama berf û pûk, zipik û teyrok û boranê ye. Heta dera ko bînahiya mirov lê hikim dike çav ji spîtahiya berfê pê ve tu tiştî nabine. Welat di bin poşike nerm û stûr, di bin poşike spî de, lal û bêdeng nivistî ye.

Di tariya şevê û di hişkesayiyê de, jê re, bi tenê guregura ezmanan û reqîna blêç û birûskan diforînin. Di şevên sayî de hilma erdê di navbera erd û ezmanan de wek perdeke zivin disekine û di heyveronê de ev perde wek tûleke tenik dilive û direcife. Ev şev dirêj û bi melal in; roj kurt in. Roj kêm caran xwe şanî dide; û dinya ji ronahiyê bêtir di tariyê de dizivire, tê û diçe, li rojê, li çira û li tehna wê digere.

Cih cih çiyayine bilind, wek Agirî, Sîpanê Xelatê zozanên Bingol û Şerevdînê û Herekola welatê navîn çarkokine spî li serên xwe wer anîne û ji jor de, li hin reşahiyên deştê, wek li wan ecêbmayî, fedikirin; serên xwe ber bi ezmanan hildidin û çarikên xwe her û her, bi hiriyeke xwerûspî û ji nû ve dixemilinin.

Her rihber û candar daye pey cihekî germ; çi ban çi şikeft, hemî ji bona wan qenc in. Tifik dildara herkesî, hewînga her tiştê bican e. Tiştê ko mirov dixwaze çend perengên êgir an tirêjeke tavê ye.

Herçî heşînahî ne; di bin poşiya berfê de xwe germ hiltînin; berf agirê wan e. Heçko erd mirî ye û tiştên rihber jê direvin; qey ditirsin û naxwazin bi nesaxiya wê bikevin.

Dilê herkesî bi imîd û hevîke tekane hiltavêje : Çile û rojên serma pîrejinê û herçî gît in derbas bibin û roj bi tirêjên xwe ên zêrîn şopa ewrên reş ji singa ezmên bimale û Bihar bi xeftanê xwe ê rengerenge rûyê erdê ji nû ve bigire; berf û qeşa bihelin; ro û robar û çem biherikin; di mêrg û deşt û çiyan de heşînahî serî hildin; darên rût û tazî bikevin xeml û xêzên xwe ên kesk û şîn; hezar di gulistanan de dasitanên xwe ji gulbinan re bixwînin, hacîreşk bi firra xwe a lez li singa ezmanan xetên xwe ên bê rêç û şop ji nû ve bikişînin.

Xwedê vê hêviya mirovan dibe serî û Bihar tête rû; dinya vedije û herçi miletên îranî yên ko berî herkesî û bi rêberiya Zerdeşt yekîtiya Xwedê naş kirine vê rojê şahînet dikin û jê re newrûz an nûroj dibêjin. Ji ber ko di gera rojê de roj û heyameke nû dest pê dike.

Dibejin ko ev cejin panişahê iranî î fesanewî Cemşîd daniye û piştî afirandina dinê herçi stêrk in di vê rojê de bi ger û firê ketine, û ji hev belav bûne.

Ehmedê xanî vî şairê kurdan ê mezin, yê ko daye pey her tiştê miletê xwe ê milî û nijadîn; di Memozîna xwe de qala Newrûzê ji kiriye û gotiye :

Xel-laqi cihan ji feyzi fitret
Heyati felek bi wechi qudret
Bê qalib û bê mihit û miqyas
Bê alet û bê mişir û meqras
Evçende miez-zem û midew-wer
Evrenge misen-neh û miker-rer
Înane bi mareza wicûdê
Kêşane bi menzera şihûdê
Hikmet ew e, ev hemî li kar in
Hindek di peya û hin siwar in
Hindek di betî û hin serî in
Hindek di mein û hin menî in
Hin midbir in û hinek mideb-bir
Hin miqbil in û hinek miqed-dir
Hin katib in û hinek di istad
Hin mitrib in û hinek di cel-lad
Hin rojperest in û hin şebefrûz
Hin xus-sarevîn û hin xemendûz
Hindek di misali Zîn zerî ne
Hin şibhi Memî di mişterî ne
Bilcimle miseyqel û minîr in
Hin padişeh in, hinek wezîr in
Hindek ji teher-rika tebîî
Ew têne bi niqteya rebîê
Tecdîd dikin ji bo we salê
Gava weko têne îtidalê
Danayi miem-meri kuhensal
Evrengehe go ji bo me ehwal
Got adeti pêşî û zemanan
Ev bû li hemî cih û mekanan
Wextê weko şehsiwari xawer
Tehwîl dikir di mahi Azer
Yani ko dihate birci sersal
Qet kes ne dima di mesken û mal
Bilcimle diçûne der ji malan

Heta digehişte pir û kalan
Roja ko dibûye idi newrûz
Tazîm ji bo dema dilefrûz
Sehra û çemen dikirne mesken
Bêda û demen dikirne gulşen
Xesma ezeb û keçên di bakir
Elqis-se cewahirên di nadir
Têk da di mizey-yen û mileb-bes
Vêk ra li tefer-ricê mirex-xes
Liken ne bi lehmet û bi min-net
Belki bi teriqi şerh û sin-net
Lewre ko ewan xerez ji geştê
Meqsûd ji çûyina bi deştê
Ew bû ko çi talib û çi metlûb
Yanî du teref mihib û mehbûb
Ev her du celeb ko hev bibinin
Kufwê di xwe ew ji bo xwe binin.



ZERDEŞT

Rêber û Rêzanê miletên îranî û xwediyê Avêstayê

Dewra felekê ji bexti lêrûz
Disan ko nima ji nû ve newrûz
Mebnî li wê adetê mibarek
Şehri û sipahiyan bi carek
Bajar û kelat û xani berdan
Teşbîh bi nijdiyan û cerdan
Sef sef dimeşine kûh û deştan
Ref ref dixweşine seyr û geştan
Esnafî imem sixar û kub-bar
Qetha ve ne ma di şehri dey-yar

Hindek bi peyarî çûne baxan
Hindek bi siwari çûne raxan
Hindek bi tebayî û bi kesret
Hindek bi hevali û bi wehdet
Rabûne ve xanim û xewatin
Wan ji tiji gul kirin besatin
Hûran kire meskenê xwe cen-net
Bê perde û bê melal û min-net
Dûşize û dixter û rewalan
Pakize izar û zilf û xalan
Etrab û kewaibê di ezra
Merdan û mirahiqê di zîba
Eshabi qimaş litli rixsar
Erbabi metah hisni didar
Wan lêk dikirin metah yek erz
Texmin dikirin bi tûl û w'elerz
Sewdakeri eşq bûn di bazar
Hem bayii hisn û hem xeridar
Sersali û bakir û rewalan
Sedsali ciwan û pir û kalan
Sersal li resm û rahi mahûd
Gêran diçû meqami mehmûd.

Qendili minir dêri ezreq
Mişkat hemil kirin mirew-weq
Sersal ko bû ji nû ve mamûr
Mir daye gerê di taze destûr
Destûr ko bû ji bo wişaqan
Rabûn hemi şibheti işaqan
Têk çûne bi mareza mezadê
Dildadeyi meqsed û miradê
Il-la bi tenê Memo û Tacdin
Wan dane xwe dixterane tezyîn
Yani di dema ko bûye tehwil
Ew her du bira di came tebdil
Istebreq û sindisin di ber da
Çend mehcer û miqrime bi ser da
Kakûl kiri bûne lir-re her sû
Perçem kiri bûne zilf û gêsû
Wan lew kiri bû libas tesrif
Da qet nebitin li wan çu teklif
Pûşide libasi dilberanî
Seyran dikirin bi sergiranî.

Tiştê ko Xanî di heqê Newrûzê de gotiye ev e. Xanî digel sebebên vê cejnê ên feleki ayin û azinên wê ên civaki ji gotine.

Ji qesideyên Xanî dixuye ko di wê heyamê de kurdmancan ev cejin bi ayinine mezin şahinet dikirin û ev cejin gelek biqedir dizanîn. Welê xuya dike ko mir bi xwe di cejinê de hazir dibû û ayinên şahinetê bi emirê wî dest pê dikirin. Herçi ciwan di vê cejnê de di bexçe û bistanan de rastî hev

# ÎŞÊ PAQIJ

— JI ROJNAMEKÊ —

Aşir beg çil û pênc salî bû; lê hîn jin ne anî bû Ev bûne 22 sal Aşir beg li ber masa defterxanekê de dixebitî Xwingiran bû. Karek ji destê wî bi zor derdiket.

Ko jê re bigotana: « Ji kerema xwe hinek lez bike û vî îşî zû xelas bike » Aşir beg dienirî û digot : « No, zû qedandin ji min nayê. Metelek heye dibêje : Îşê paqij di şeş mehan de çêdibe ».

Eger îşê heval an nasekî biketa destê wî Aşir beg pê dişewitî. Ewê di defterxanê de destqifilî biçiwa wî serî, bihata vî serî û dîsa wê vegeriya cihê xwe. Hemî bêfêde, dawiya iş ne dihat.

Hevalên wî carina digot : « Bêkariyê ev zilam xistiye vî halî; carekê bizewiciya ». Lê Aşir beg tucaran jin ne tanîn bîra xwe. Heval û hogiran jê re sexlixa gelekan dîdan. Lê cihaba Aşir beg, hergav ev bû : « Niho ne wexta wê ye. Jinanîn li kû ez li kû ? Ji îro bi şûn de serê xwe bêxim belayê ».

Aşir beg hero di wexta xwe de dihat dairê li ber ma ê rûdinişt û ji guhdarine nexuyayî re çend caran « Îşê paqij di şeş mehan da diqede » digot, û xwe ji bin barê xebatê xelas bikir.

*
* *

Wext guherî bûn. Jin ji mina mêran memûr dibûn û di dairan de dixebitîn; nemaze li ber mekineyên nivisandinê. Tilinivîsek anî bûn daîra Aşir beg jî. Ew keçikeke porzer, bejinzirav û hergav devbiken bû. Di destpêkê de ev tişt ji Aşir beg ra xweş ne hat. Çavên wî li keçikê diketin û Aşir beg digot : « Işê pak di şeş mehan be diqede »; û bi ser ve zêde dikir : « Fesibhanelah ... dairên dewletê gihane çı halî; em di nav jin û keçikan be mane ».

Lê Roj bi roj çavên Aşir beg hin bêtir li keçika tilînivîs dinihêrtin, lê êdî daireyên dewletê gihane çi halî ne digot, lê pirsa « Îşê qenc di şeş mehan de diqede » ji devê xwe ne dixist. Ji ber ko niho ji berê bêtir îşê tukesî ne diqedand. Kijan xudangilî qesta wî bikira, kijan dergevan kaxazek jê ra bianiya bêî ko bipirse û bêî ko bizane îş çi ye û bêî ko çavên xwe ji tilinevisê ba bide; li wan vedigerand û digot ! « Îşê pak di şeş mehan de temam dibe ».

*
* *

Rojekê di dairê de ştexaliyek çêbû !

« Aşir beg jin tîne .....

— Piştî çil û pêncan ?

— Ma lê . . . û çawan yeke mîna xezalan

— Gelo kê tîne ?

— Di defterxana wî de keçikeke tilînivis heye

— Ne lo ! . . Ma tu çi dibêjî ?

Ev gotin ne vala bûn. Bi rastî Aşir beg tilînivisê mehir dikir. Dilê keçikê jî bebû. Aşir beg, Aşir begê berê hû. Disan bi xwîngiranî ji xudankaran re digot : Îşê pak di şeş mehan de diqede.

Jina Aşir beg dev ji xebata dairê berda bû û bû bû kebaniya mala xwe. Lê ev kebanîtî pir dom ne kir. Piştî zewaca wan bi şeş mehan jinika reben bi jana zirav ket û çû ....

Gava heval bi mirina jina wî hesiyan çûn ayîna veşartina wê. Hin cenaze li mal bû. Hevalên Aşir begî borandin mezeleke li pişta derî. Aşir beg bi çavine bihêstir kete hundir. Ji hevalan ê meztir, başkatibê dairê ji bo seryweşiya wî çend pirs gotin. Herweki dibêjin: bila serê te şax bê, her tişt emrê Xwedê ye; dinya ji tu kesî re ne maye . . . h . d . . . .

Aşir beg çavên xwe ên bihêstir li hevalên xwe gerand; dil kir ko tiştekî bibêje. Lê eql û meziyê wî hewqas bi hev keti bûn ko tiştek ne hat bîra wî. Rûyê xwe ji hevalan bada û bi zor mirmirî : « Îşê paqij di şeş mehan de diqede ».

ŞEVGER

*
* *

dihatin û bûk û zava hevdû didîtin û hinkûfên xwe dibijartin.

Zerdeşt di Avêstayê de rast bi rast çêlî Newrûzê ne kiri be jî qala cejineke Biharê kiriye û jê mexsed bivê nevê Newrûz bi xwe ye.

Îro ev Cejina me a milî û nijadîn di nav me de kêm kiri be ji dîsan di hin bajarên Kurdistanê de wê şahinet dikin. Lê herçî kurdên êzîdî ne jê re « Cemayî » dibêjin û wê wek cejineke miqedes dizanin Di vê rojê de kurdên êzîdî cilên xwe ên nû li xwe dikin û di erdekî rast de digehin hev. Her mal xwarina xwe bi xwe re ditîne. Firaxan tevlî hev dikin û wan firaxan direjkî li erdê rêz dikin û li hêr du aliyên wê sifrê rûdinin û firaxina xwe dixwin. Rojê pêde li çolê diminin, direqisin, distrên û dileyizin.

Newrûz di nav kurdan de kêm kiri be jî ji milê din di welatê rehelatê nizing de ji bo miletên neari jî di çaxên salê de bûye destpêka Biharê.

HEREKOL AZÎZAN

# REWŞA DINYAYÊ

**IŞÊ HINDISTANÊ** — Bûyera siyasî a girantir ya van rojên paşin işê Hindistanê ye. Şerê Pesîfîkê gihaştiye deriyên Hindistanê Japon jî propegendeke mezin çêdikin û xelkê Hindistanê li ingilîzan dieliminin. Hindî jî istiqlala xwe dixwazin. Nemaze ji ber rewşa îro ingilîz jî gelek guh didin mesela Hindistanê.

Sir Steford Krîps, ji bona vê yekê li 22ê Adarê hate Hindistanê Bi Krîps re projeke wezareta Ingilîstanê hebû. Li 30ê Adarê Krîps ew proje belav kir û da zanîn ko tiştê ko Ingiltere dikare bide Hindistanê ev e; û proje bi tu awayî nayête tadîl kirin. Ji hindiyan re divêt an projê weke xwe qebûl an red bikin.

Li gora vê projê Ingiltere heqekî mina heqê domînyonan dida Hindistanê. Kenede û Ewistralye domînyon in. Di idara domînyonê de welat di işên daxilî de misteqil e; herçî xariciye bi taca Ingilîstanê ve girêdayî ye. Di vê projê de du şertên bişûndehişti hebûn: proje piştî şerî wê bête tetbîq kirin û hela dawiya şer herçî işên eskerî ne, tev de di destê ingilîzan de wê biminin.

Serekên Hindistanê piştî ko li projê hûr bûn ji ber van her du şertan ew red kirin. Lê Krîps bi serekên Hindistanê re bi siyasetê bi rê vè çû û ne hişt ko mizakere yekcar bêne birin. Ji milê din nimînendeki Rûzwelt, kulnêl Conson û Çenkeyşek ketin navê û dikin ingilîz û hindiyan li hev binin.

Hindî têk de ne ji yek din û mezheb û zimanî ne û ji lewre di nav hev de jî ne yek in. Di nav hindiyan de qederê 80-90 milyon misilman hene. Herçî misilman bi hindiyên bûdaperest ne xweş in û çêtir meyildariya ingilîzan dikin û dibêjin heke heqek ji Hindistanê re bête dayîn divêt hindiyên misilman hikûmeteke cihê binin pê.

Ji milê din li Hindistanê mehrace hene. Ev mehrace wek mîr û axayên me ên berê ne; serekên eşîran in. Xelk bi her awayî bindestiya wan dikin û ev mehrace gelek dewlemend in. Heke li Hindistanê hikûmeteke milî û adetî hate çêkirin bivê nevê işê hikûmetê wê bikeve destê mirovên xwenda û karnas û hikimê mehracan ê eşîrî wê qels bibe û ew hêdî hêdî li ber qanûn û nizamê wê bihele û ji orté rabe. Ji ber vê yekê mehrace jî ewçend meyildariya vî işî nakin.

Lê herweki me got mizakere dom dikin û ingilîz dixwazin işê Hindistanê rojekê berî rojekê safî bikin.

Li gora nûçeyên paşin Sir Krîps vegera xwe bi şûn de hiştiye, generâl Wêvel ketiye navê û dikin tevdireke welê bibinin ko her du alî qima xwe pê binin. Lê ev teşebis ji ne çû serî û li 11ê Nîsanê Sir Steford Krîpo ji Nûdehliyê û bi radyowê da zanîn ko kongra hindiyan û civata misilmanan qima xwe bi şertên proja ingilîzî ne anîne û proje bi şûn de avêtine. Hindî dixwazin proje îro bêt tetbîq kirin û di meclisa midafeha Hindistanê de nimînendeki wan hebe.

**ŞERÊ PESÎFÎKÊ** — Şerê Pesîfîkê giraniya xwe daye nemaze Ewistralyayê û tixûbên Hindistanê,

Herçî Ewistralya ye, herweki me berê jî gotî bû emêrîkaniyan midefeha wê li ser xwe girtiye û tê de xwe kar dikin. Li 15ê Adarê general Mek-Ertûr, yê ko li Filîpînê bû hate Ewistrayayê û bûye serfermandarê leşkerên sondxwariyan yên Pesîfîka-Nîvro Merk-Etûr di Filîpînê de bi xurtî li pêşiya japonan sekinî û bi mêranî şerê wan kirî bû. Ji hingê ve deng bi vî generalê emêrîkanî ketiye.

Japonan piştî ko esker derêxistine giravên Timor û Gina-Nû gelek nizingî li Ewistralyayê kirine. Balafirên japonî ji wargehên wan giravan radibin û her û her li wargehên Ewistralyayê didin. Mirov digot qey dilê japonan heye esker derînin Ewistralyayê jî. Lê japonan ev tişt hêj ne ceribandiye.

Herçî Şerê Filîpînê, vê paşiyê, di nîvgirava Batanê de emêrîkaniyan terka kozikên xwe da bin jî zora wan ne çûye, xwe dane paş, ketine kozikine din û li ber xwe didin. Japonan ji nû ve esker derêxistine Batanê û dikin ji nû ve dirêji emêrîkaniyan bikin û işê Filîpînê bi temamî safî bikin.

Piştî şerine xurt emêrîkaniyan terka Batanê da û li 9ê Nîsanê kişiyane girava Korêigdorê. Ev girav di zelîca Menîlyayê de ye û tê de kelehek heye. Lê bireki eskerê emêrîkanî di Batanê de mane û ketine destê japonan. Wer dixuye ko şerê Filîpînê gihaştiye dawiya xwe. Lê herçî ji hehe emêrîkaniyan di Filîpînê de bi qehremanî şer kirine û şanî dinyayê dane ko mêrine qenc bi çekine kêm ji dikarin li ber dijminê xwe bisekinin. Bêdiro ev çar meh in Filîpin ji welêt qut bûye û ji hingê ve jê re ne piştmêr ne jî çek û cebirxane ne hatine. Gelek heye ko eskerên Filîpînê balafir ji nîn bûn; lê bi xwe

mêrine qenc bûn. Mêrê qenc dikâre her tiştî bike; ko hewce bû dibe barût, dibe gule û dikeve ser serê dijminê xwe.

Herçî Cave, Simetre, Borneo û giravên Hindistana Holendî ên meyla tev de keti bin jî destê japonan, di hin deran de şerên çetan dom dike û balafirên ingilizî û emêrikani li wargehên wan giravan, yên ko îro di di destê japonan de ne, gah gah hicûm dikin û li wan dixin.

Ji milê din di Pesifikê de şerine betiri jî çêdibin û nemaze noqarên emêrîkanî dikin vaporên japonan ên barkêş bin av bikin.

Li aliyê Hindistanê şer nemaze di Birmanyayê de germ bûye. Di vê eniyê de nexasim eskerên çînî li pêşiya japonan sekinine.

Piştî ketina Rengûnê şer di dora Tongo û çemê Îrewadî de çêdibe. Li dawiya Adarê japonan Tongo zemt kir û eskerên çini û ingilizî xwe jê bi şûn de kişandin.

Ji milê din japonan avête ser giravên Endemanê û ew xistine destên xwe. Giravên Endemanê dikevin nîvroyê xelîca - Bengalê. Rojnameyên Londrê di vê babetê de dibêjin: standina van giravan delîleke din e ko dilê japonan heye dirêjî Hindistanê jî bikin. Di hejmara 41ê de me qala girava Seylanê kiri bû û goti bû ko mihtemel e ko japon berdin vê giravê jî.

Piştî ketina Sengeporê ehemiyeta Seylanê bêtir bûye. Li 5ê Nîsanê balafirên japonî bi ser vê giravê de girtin û ew dan ber bimbeyên xwe. Dîsan di vê rojê bi xwe de balafirên japonî li Medras û, çend benderên Hindistanê ên din jî xistine. Medras û benderên din dikevin nîvro rohelatê Hindistanê û ji 400 heta 800 kîlomêtirî di ser Seylanê re ne. Seylan û benderên lêxistî tev de ji wargehên japonan gelekî dûr in. Tu balafir nikare ji wan wargehan rabe, here Seylan û benderên din û dîsa vegere wargehê xwe.

Ji lewre û welê dixuye ko çend vaporên balafirhilgir hatine nizingî wan benderan û balafirên xwe ber bi wan benderan ve firandine. Balafir piştî ko bi karê xwe rabûne vegeriyane ser balafirhilgiran.

Lê wer dixuye ko ingilîzan di Seylanê de tevdîra xwe dîti bûn û betariyên balafirşiken xurt kiri bûn. Ji ber ko danezana ingilîzî ya ko di heqê vî şerî de hate belav kirin dibêje : Japonan bi 75 balafiran dirêjî Seylanê kiriye. Me ji wan 27 balafir di cih de avêtine erdê. Xesarine welê gihaştine 25ên din ko divêt ew ji bi rê ve keti bin behrê û ne gihaştî bin vaporên xwe.

ŞERÊ ÛRIS — Dinyayê tev de çavê xwe berdaye vê eniya şer. Ji vî milî be, ji wî milî, mirovdewletên sivil û eskerî, pisporên şer û iqtisadî yekzar û yekziman dibêjin ko şerê Ewropeyê di vê eniyê de û bi şikestina yekî ji her du şerevaniyan wê bigehe encamê.

Ji milê din serekdewletên sondxwariyan bi tevayî mikur tên ko ji bo sivikirina barê Rûsyayê divêt di roavayê Ewropayê de enîke nû bête danîn; yanî ji sondxwariyan re divêt esker derînin peravên Ewropê yên roavê.

Lord Biverbrûg di vê babetê de gotiye: « Rûzwelt, Çorçîl û Mekenzîking ehemiyeta eniya ûris qenc bîr dibin. Ji xwe heke ordiwa ûris bêgav ma û kişiya pişta çiyayên Oralê imîdên me ji bînî bêne qelandin. Şerê Biharê wê bibe şereki encambexş. Ji Emêrikê re divêt di şerê Biharê de roleke mezin bilebîze. Xebata febrikan bi tenê bi şixulandina tevayên febrîkê, di qadên şer de bi kêr têt ». Biverbrûg pê dixwaze bide zanîn ko ji Emêrîkê re gerek e esker bişine Ewropayê û divêt ew esker bi sondxwariyan re şerê elemanan bikin.

Li gora kaniyên bêteref û yên sondxwariyan Emêrîke jî xwe ji bona vê yekê kar dike. Li 7ê Nîsanê genêral Merşal reîsê erkanherbiya Emêrîkê hate Londrê. Dibêjin ko hatina genêral Merşal Londrê ji ber vê yekê ye. Genêral ji rojnamevanan re gotiye: eskerên emêrikani bêsebir li hêviya wê rojê ne ko pê li erdê Ewropayê bikin.

Herçî eleman in ew jî karê xwe ji bo şerê Biharê dikin û dizanin ko şerê qada ûris ji bona wan şerê heyîn û mirinê ye. Li gora ajansan eleman xwe ne bi tenê di Rûsyayê de lê di deverine din de ji kar dikin. Di vê navê de eleman eskerine nû ditînin Belqanê, giravên behra Êjê û peravên Îtalyayê. Ji milê din merêşal Von Brewxiç hatiye Yewnanistanê.

Li gora hawirên Londrê, li Biharê, eleman di Behra-spî de ji wê rabin hicûmeke gelemper. Pisporên eskerî yên Londrê û Enqerê dibêjin eleman ji milekî dirêjî Qevqasê bikin; ji milê din jî di Maltayê re bavêjin Libyayê û di Qibrisê re berdin Sûriyê û bi vî awayî wê bixwazin li Swêşê bêne wer.

Di eniya ûris de şer jî hêdî hêdî germ dibe. Lê elemanan hêj dest bi êrîşê ne kiriye. Yên ko radibin êrîşê ûris in. Ûris dixwazin beriya êrîşa elemanan bilindcibên mihim

# BINGEHÊN

## GRAMÊRA KURDMANCÎ

BI NAVÊ YEZDANÊ PAK Ê DILOVAN Û MIHIRVAN

## — 12 —

ŞANEK — Ji daçekên ko ji hirekî bihevketî ne û dikevin pêşiya bêjeyan ( li, bi, ji ) tu daçek nikare bikeve pêşiya pronavên lihevxistî. Ji her ko ev di wê de hene. Ji lewre mirov nikare bibêje; Mozê bi wî pê veda. Divêt bibêje : Mozê bi "wî veda. An: Mozê pê veda.

Lê herçî daçekên ko ji du biran bihevketî ne ( dî-de, jê-re, bi-ve ) birê wan ê paşîn dikare bide pey pronavên lihevxistî: ez tê de bûm, min jê re got, ev her du gund pev ve ne. Birê van daçekan ê pêşîn ji xwe di wan de ye.

Ji milê din pronavên lihevxistî dikarin bidin pey hev. Ji her ko di wan de daçekek û pronavek heye û ji lewre gava didin pey hev jî pronavek dikeve navbera her du daçekan: Min jê lê pirsî. Yanî: min ji vî li wî pirsî.

### PRONAVÊN IŞARKÎ

94 — Pronavên işarkî ji kes tişt û heywanan bi tenê kesên seyim dinininin û gava dikevin şûna wan, wan bi işaretkirinê şanî didin.

95 — Di zimanê kurdmancî de du texlît pronavên işarkî hene:

Ên pîvene: ev, ew

Ên qersene: yê, ya, yên

96 — Pronavên işarkî ên pîvene pronavine nêtar in û ji her ko şikilên wan ên kirar û bireser cihê cihê ninin li gora mêjer û zayendê navdêra ko dininimin têne tewandin û veqetandekên wan dibin. Ji veqedandekan, bi tenê ên binavkirî bi van ve dibin. Ên nebinavkirî bi van ve nabin. Ji her ko ev bi işaretkirinê ewçend binavkirî ne ko nikarin bibin nebinavkirî.

Ev — Tiştê nêzing an nevdêra ko di qisetê de piştî hemiyan hate gotin şanî dide.

| | |
|---|---|
| Ev hat | Evî got, evê got, ez evî dibînim, ez evê dibînim. |
| Ev hatin | Evan got, ez evan dibînim. |
| Ew — Tiştê dûr an navdêra ko berî çendekê di qisetê de hate gotin şanî dide. | |
| Ew hat | Ewî got, ewê got, ez ewî dibînim, ez ewê dibînim. |
| Ew hatin | Ewan got, ez ewan dibînim. |

ŞANEK — Ev pronavên ha di şikilên xwe ên tewandî de, gelek caran bêî « e » yê têne bi kar xistin: Vî got, vê got, ez vî dibînim, ez vê dibînim, van got, ez van dibînim. Wî got, wê got, ez wî dibinim, ez wê dibînim, wan got, ez wan dibînim.

Lê neêxistina «e» yê çêtir e. Ji her ko gava « e » hate êxistin provnava işarkî « ew » bi pronavên kesîn « wî, wê, wan. » tevlî hev dibe.

Şaneka jêrin di pey mada 90ı re dê bête senifandin.

ŞANEKA TARÎXÎ — Pronava berbihevîn bi biserveçûna zimên ketiye şikilê xwe ê îro « hev, êk » . Ev pronav di esilê xwe de ji sê bêjeyan bihevketî ye : « hev-û-din » an « êk-û-din » . Ji lewra berê li şûna « em birayên hev in » , « em birayên êk in » « em birayên hevûdin in » an « birayên êkûdin in » digotin. Piştre « û » ji ji navê ket û pronav bû « hevdin, êkdin » . Lê birêva di vî sikilî de jî hin tadîl hatine rû . Herwekî : Hevdi, hevdu, hevdû. Êkdi, êkdu, êkdû.

Şikilê bingehîn bi temamî winda ne bûye û hetanî îro di hin derên Kurdistanê de weke xwe têtê gotin. Ji milê din, ji ber xweşdengiyê, nemaze di zimanê niviskî de û gava pronavên berbihevîn didin pey hev an ev pronav ketine pêş an paşê bêjeyine yekite di şikilên kevin de têne îstîmal kirin.

Me ji hev re gotî bû ko sibe em hev bibînin.
Me ji hev re gotî bû ko sibe em hevdû bibînin.
Me hev nas ne kir.
Me hevdû nas ne kir

Piştî ko em li esilê vê pronavê hûr bûn emê wê ji hev de bêxin û li hêmanên ko ew anîne pê hûr mêze bikin.

Ji xwe di şikilê « êk-û-din » de mana her bêjeyê eşkere ye. Bi tenê tê de « yek » bûye « êk » . Herçî « hev-û-din » gelek heye ko « hev » jî bi mana « yek » e. Bêdiro di zarekî kurdî, di zarê dumilî de ji « yek » re « jew » an « yew » dibêjin.

---

ji destê elemanan bistînin û êrişa wan ji niho de kêmsiûd bikin. Elman ji li ber xwe didin.

Di qada nîvro de herf ji xwe heliyaye û tang dest bi karê xwe kirine. Li 9ê Nîsanê di nîvgirava Kerçê de ûrisan bi tangan dirêjî elemanan kiriye.

Herçî elemanên ko di Stareyarosê de ketine nav çemberê ûrisan hêj li ber xwe didin û hin zora wan ne çûye. Qada Smolenskê weke xwe ye Di dora Xerkovê de ji tu tişt ne guhêriye. Ûrisan di dirêjahiya eniyê de hin gund û beledan bi şûn de vegêrandi bin ji navên wan ne dane zanîn.

ŞERÊ LÎBYAYÊ — Di rojên paşîn de gelek caran hatî be ji gotin ko Romel wê rabe hicûmê, beta niho tiştek xuya ne kir û şer di navbera pêşdar û qerekolan de çêdibe û balefirên her du aliyan li wargeh û depoxaneyên hev dixin. Herçî Malte ye; balafirên elemanî, carina bêetlahî û bi şev û roj li wê didin. Herwekî me berê ji got Malte di Behra spî de wargehekî stola ingilîzî ye û li ser riya Lîbyê û Îtalyayê ye.

Şam : 12 Nîsan 1942 NÊREVAN

# DÎWANA MELÊ

— 20 —

Emrê zayî bo me bê dilber ebes
Wê li vî (1) emrê me borit pir ebes
Dil emanet da bi naehlan ne di
Lê bi naehlan mede gewher ebes (2)
Da di seyra eşqê bê dilber neçî
Lew (3) dibit seyra te bê dilber ebes
Pir li pey weslê me se'y û cehde da
Cehde û se'ya me hatin der ebes
Ahûyê (4) kuştim bi derba xencerê
Ma di mêlakê derit xencer ebes
Dil ji derba kaşowan bû parepar
Ko di meydanê dibit sed ger ebes
Mehdera wî sixteyî îro bikin
Ez dibêjim nabit ev mehder ebes
Kişf û mane kî li lewhi simê wî (5)
Niqteyi misk û xeti enber ebes
Da mela hişyar bit lê pir kesan
Sîne pir lê dane sing û ber ebes.

— 21 —

Femi (1) enberşikenê bêt ji enber meke behs
Bil ji wê silsile û zilfi mienber meke behs
Veke lêvê û ji nêvê biwerîn qend û nebat
Ji lebi laleşekir bêj û şekir meke behs
Bi ser enguştê eqiqê bide fincana rehîqê
Abî heywan te çi yin nav ji kewser meke behs
Zeriyên şehle û dirdane bibin şahidi bezm
Ji genim reng û siyeh celre (2) û esmer meke behs
Di beşaret bi işaret ji neyê bête sima
Tu b'wê nay û semayê bike hawer meke behs
Di nihanî bi deraxûşê bidî cani şirin
Şaxî emrî bi xwe birji û ji Qeyser meke behs
Ayeti hisni mifes-sal kî ji keş-şafi cemal
Ilmi eşqê bike tefsîr û ji defter meke Behs
Razi dehrê ji sipehrê tu nizani bi cedel
Hikmeti dawer e ew tu ji hikmet meke behs
Avi heywan te divêtin tu bibe hemre Xidir
Cami Cem bin û ji Dara û Sikender meke behs
Ji ezel aqibeti kar ko malûm ne bitin
Cami mey noş ji teqdiri miqed-der meke behs
Dilê yarê me ne bû nerm bi sed ab û girî
Ji dilê dilberi ma berê mermer meke behs
Tir bi sed têne ceger, sine li ber maye çeper
Ji dil û cerg û kul û sineyi kerker meke behs
Şîrê elmasi kişinit tu ji lamih de xeber
Vegirit beq-qeqi yaqût ji gewher meke behs
Ji şefeq zibre xuya bit tu binêr perwînan
Cihetê (3) ew binimêt tu j'meh û xawer meke behs
Li rûyê yar di nû ve me qeran dine di mest
Tu ji seyri qemer û tali û exter meke behs
Pir ji dêmê xet û xalan te xeber daye mela
Nezerê wer bide bejnê ji mifes-sir meke behs.

## FERQÊN NIVIŞTAN

— 20 —

(1) tevî. (2) me da gewher ebes. (3) lê (4) ah wê (5) kifş e mana kî li lewhi sîm wî

— 21 —

(1) Namî. (2) çirde. (3) cibhetî.

# LES JEUX KURDES

Le jeu, les voyageurs l'ont souvent remarqué, tient une grande place dans la vie des paysans kurdes. A chaque occasion (fêtes, mariages, etc ), les enfants, et même les jeunes gens et les hommes faits se rassemblent dans les prés qui entourent les villages, et organisent des parties endiablées. L'ardeur puérile et l'acharnement que des gaillards de trente ans et plus apportent à un tournoi de saute-mouton ou de colin-maillard offrent à l'étranger un spectacle bien pittoresque. Sans aller jusqu'au Kurdistan, sur une place de Beyrouth voisine du port, on peut voir assez souvent des crocheteurs omeris en train de se disputer quelques piastres aux billes, et tellement absorbés par cette occupation qu'il semble que le reste du monde n'existe plus pour eux.

Naturellement, les jeux guerriers et les combats d'animaux étaient autrefois les divertissements les plus appréciés. Le Charaf Nameh ( XVII siècle ) nous apprend que " les jeunes kurdes passaient tout leur temps à jouer au polo et à tirer à la cible. " L'Anglais Rich ( Narrative of a residence in Kurdistan, 1826/7 ) parle des exercices d'escrime pratiqués à la cour des Babân. L'un d'eux consistait à trancher d'un coup de sabre une pièce de feutre épaisse d'une quarantaine de couches, mouillée au préalable, et qui était soit étendue sur le sol, soit suspendue au plafond. ( t. I, p. 132 ). A la même époque, la lutte était également très en vogue, et les rencontres donnaient lieu à des paris ( ibid, t. I, p. 120). Cependant, comme la pratique de ce sport provoquait souvent des bagarres sanglantes ( le vaincu, que soutenaient ses amis, ne voulait jamais reconnaître sa defaite ) on ne s'y adonne plus que trés rarement. D'après Millingen, ( Wild life amongst the Kurds, 1870), des joutes, des concours de lancement de pierres étaient fréquemment organisés ( I. 256-257 ).

Dans les pays de cavaliers ( Kurdistan persan, Serhedan ), on pratique encore de nos jours certains jeux à cheval. H. Massé, ( Croyances et coutumes persanes, p. 421 ), décrit l'un de ces divertissements, appelé taghaleh : il s'agit de lancer sur le sol un bâton garni de cuir à chacune de ses extrémités, et qui rebondit aux côtés du cavalier. Celui-ci doit le saisir au vol.

Les courses, les joutes, le djérid arabe ( cidi ) sont eux aussi très répandus.

Les récits des voyageurs du siècle dernier renferment de nombreuses allusions à des combats d'animaux, qui s'accompagnaient de paris en argent. Rich ( t. I, p 102 ) parle d'un propriétaire de Koy Sandjak, qui envoyait son chien jusqu'à Suleymaniyé, pour le faire se mesurer avec un adversaire réputé. A Seldouz ( Wilson cité par H. Massé, p. 423, n. 2 ), et dans la région de Qotour (Millingen, p. 256-7 ), on organisait des batailles de buffles; elles avaient généralement lieu le soir, à proximité de l'abreuvoir. Enfin, Rich ( t. I, p 91-3 et p. 109 ) décrit les rencontres de perdrix qui passionnaient la population de Suleymaniyé. Les perdreaux de combat avaient chacun leur nom, et leurs maîtres les soignaient avec amour; ils leur faisaient même passer l'été à la montagne, pour les maintenir en bonne forme. Les oiseaux jeûnaient pendant vingt-quatre heures, la veille du match. Au moment de la rencontre, on disposait les cages en cercle, et les assistants se plaçaient un peu en retrait. On faisait alors sortir successivement les deux adversaires, et la lutte commençait. Elle se terminait lorsque l'un des champions arrivait à mettre l'autre en déroute, ou à le saisir par la nuque et à le traîner deux ou trois fois auteur du ring. Rich cite encore des combats de béliers, et l'on trouve souvent dans les chansons des comparaisons inspirées par ce sport. Un chant de guerre déclare :

> Şerê feqîrê Êzîdiya û sofiyê Misilmana
> Xweştir e ji şerê nêrî û berana !

La bataille que livrent des faqirs yezidis (1)aux soufis musulmans

Est plus belle à voir qu'un combat de boucs ou de béliers !

Les jeux suivants, qui se pratiquent en plein air, sont appelés jeux d'été.

Hol, ou Gok ( hockey )—. Analogue au hockey européen. La crosse s'appelle çewgan, çemik, ou kaşo, et la balle, gok. C'est de loin le jeu le plus populaire au Kurdistan. Il arrive que l'on se lançe des defits de village à village. Les équipes adverses se rencontrent à mi chemin, et la compétition dure parfois une journée ou plus.

Baûtan ( saute-mouton )—. Dans certaines régions ce jeu s'appelle aussi kervanê xwê ( la caravane de sel ). Durant la partie, on chante le refrain suivant :

> "Baûtan, xweş baûtan !
> Sera didiwan çûme çiyan,
> Min digo : " Pîrê, piçkî rûn ! "
> Gahê reşî nav keviran. "

( Saute-mouton, joli saute-mouton !
Pour la seconde fois, je suis allé sur les monts.
Je disais : " Vieille, un peu de beurre ! "
Le bœuf noir est dans les pierres. )

Çire. — Notre jeu de barres.

Talûl. — Chacun des joueurs est muni d'un long bâton. L'un d'eux, le talûlçî, se place sur une butte, et lance à ses camarades une petite pièce de bois nommée talûl. Les joueurs se la renvoient les uns aux autres, à l'aide de leurs crosses. Si le talûlçî manque son coup lorsque le talûl revient vers lui, il est exclu du jeu ( dimire, il meurt ) et un autre le remplace.

Qaq ( billes )—. Se joue à deux. Chacun des adversaires a deux billes. Celle que l'on lance s'appelle qaq, et celle qui sert de but, gule. Si l'on parvient, à l'aide de la premiére bille, à envoyer la seconde à plus de trois pas, on a le droit de redoubler son coup. Celui des joueurs qui réussit le premier à couvrir de la sorte une distance de cent pas a gagné.

Apê Mûs ( colin-maillard )— . Se joue à deux. Les adversaires sont séparés par une grosse pierre, un escabeau, etc, sur lequel chacun doit tenir la main gauche. L'un d'eux a les yeux bandés. il est muni d'une corde qu'il brandit en criant : " Apê Mûs, adeta te derbeke bê namûs! " ( Oncle Mûs, tu as l'habitude de frapper en traître.) Il s'efforce d'atteindre son partenaire qui se dissimule, cherchant à éviter les coups. S'il est touché, les joueurs changent de rôle.

Sora berda Mema ( Les Soran poursuivent les Maman ) (2)—. Les joueurs se divisent en deux camps, Soran et Maman. Entre les deux groupes, deux comparses tiennent un manteau tendu à la manière d'un rideau. Un Soran et un Meman s'approchent simultanément du manteau, en rampant, de manière à n'être pas vus. Un arbitre les interroge alors tour à tour, à voix basse : il s'agit pour chacun des adversaires en présence de deviner qui se trouve en face de lui. Si c'est le Soran qui y réussit le premier, l'arbitre crie; " Sora berda Mema ! ", ou inversement : " Mema berda Sora ! " Le groupe indiqué s'élance sur

les traces de l'autre, qui prend la fuite. Si l'un des poursuivants parvient à attraper un membre du camp adverse, le partie est gagnée, et les vainqueurs sont récompensés par une promenade à califourchon sur le dos des perdants.

Dık û mirtşk ( les coqs et les poules )—. Deux camps, celui des coqs, et celui des poules. Le parti des poules est commandé par un coq. Les poules sortent, se tenant dos à dos, autant que possible. A ce moment, les coqs du' groupe adverse se jettent sur elles et tentent de leur sauter sur les épaules. Leur coq cherche à les défendre. S'il parvient à désarçonner l'un des assaillants, le camp des poules a gagné et les coqs doivent se laisser chevaucher.

Doşek û balif ( matelas et coussins )—. A quelques détails près, analogue au précédent.

Les jeux que nous venons de citer ne sont plus guère pratiqués de nos jours. Certains sont même complètement tombés dans l'oubli. Les circonstances politiques et matérielles ne tarderont pas à faire disparaître ceux qui subsistent, comme d'ailleurs bien d'autres traditions kurdes. Les seuls divertissements auxquels on s'adonne régulièrement à l'heure actuelle sont ceux dont la mise en train nécessite moins d'apprêts. La liste qui suit—et elle est loin d'être complète—montrera qu'ils ont encore nombreux.

Les jeux que nous allons décrire se répartissent en deux catégories: jeux d'hiver, exécutés à l'intérieur des maisons, et jeux d'été, qui demandent plus d'espace et ne peuvent s'organiser qu'en plein air. Cette distinction, qui semble très nette, m'a été précisée par plusieurs infomateurs.

Şetrenc(échecs) —. Les échecs sont connus depuis fort longtemps au Kurdistan. Comme dans la Perse ancienne, tout membre de la noblesse doit en posséder une bonne connaissance, sous peine d'avoir une éducation incomplète. Un vieux chef auquel un de mes amis demandait un jour s'il savait y jouer répondit simplement : « Je crois passer aussi pour un agha kurde. » Les noms des pièces sont les suivants : şah, le roi; ferzîn, la reine; hesp, le cavalier; fîl, le fou; rex, la tour; peydek, ou peya, le pion.

Çûkfirî ( pigeon vole )—. Les joueurs s'installent en cercle. Le chef du jeu lève la main en disant: " Çûk firî fir ! " ( Moineau vole ! ) ou " Qaz firî fir ! " ( Oie vole ! ), ou encore : « Qazî firî fir ! » ( Cadi vole ! ) .Les participants doivent lever la main ou la garder baissée, suivant que les êtres ou les objets cités sont susceptibles ou non de voler. Celui des joueurs qui se trompe est puni: on couche le perdant face contre terre ; l'un de ses camarades lui pose la main sur le dos, un second place la sienne sur celle du précédent, puis un troisième, etc. On dit alors :

"Dombila, dombil !
Axçî ko nas ?
Gûê beraz, inç ko nas ?
Destê kî li ser desta ?"

( Tambour, tambourin !—Qu'est-ce, ô gens ?—Excrément de porc, qu'est-ce, ô gens ? —Qui a la main par dessus celles des autres? ) (1). Si la réponse donnée est juste, le joueur reprend sa place, sinon, on le frappe et l'on recommence jusqu'à ce qu'il ait deviné.

Dibistan (l'école)—. Se joue en hiver. Des enfants s'accroupissent en cercle et étendent mains. Le chef de jeu tire un de ses camarades au sort, en s'aidant de la formule suivante; "Yekê yekê, yekanekê, dibistanê, gula çepê, malê me ye, malê we ye, x̄ilex̄ile ye, beba cê ye, bîst li te ye ! " ( Un par un, l'un d'entre eux, rose de gauche, c'est à nous c'est à vous, cela remue, c'est un grain d'orge, le vingt à toi !)Celui sur qui est tombé "le vingt" enfouit aussitôt les mains dans ses vêtements, pour les réchauffer. Le chef désigne alors un autre de ses partenaires, puis un troisième, etc. qu'il ne reste plus personne, il demande : " Germ bûye, germ ne bûye ? " ( Est—ce chaud, ou non ? ). Les uns répondent oui, les autres : " Pas encore. " Le maître de jeu ordonne alors à ceux qui prétendent s'être réchauffés de lui toucher les joues avec les mains, s'ils ont menti, il les punit : Il tire l'oreille du délinquant tout en le questionnant, jusqu'à ce qu'il obtienne une réponse satisfaisante. Un dialogue s'engage : " As-tu fait boire mon âne ? — Oui, je l'ai fait boire. — Lui as-tu donné de l'eau chaude ou de l'eau froide ?—De l'eau chaude.—Tu lui as brûlé la bouche !—Non, de l'au froide !—Tu lui as gelé la bouche !—Non, non, de l'eau tiède ! —Alors, c'est bien, tu lui as refraîchi la bouche."

TAWÛSPARÊZ

(1) Je ne saurais garantir l'exactitude de la traduction de ce refrain, qui est en kurde mêlé d'arménien.

(2) Les Soran et les Meman sont deux tribus du Botan.

# Kitêbxana Hawarê

Hejmar:

1 — Rêzana Elfabiya Kurdî C. A. Bedir-Xan.
2 — Rupelnine Elfabê C. A. Bedir-Xan.
3 — Dilê Kurên Min Dr. K. A. Bedir-Xan.
4 — Bîyişa Pêxember. Bi Kurdiya dumilî, bi dîbaca C. A. Bedir-Xan
5 — Nivêjên Êzediyan bi dibaca C. A. Bedir-Xan
6 — Mektûb ji Mistefa Kemal paşê re
7 C. A. Bedir-Xan
1 — Mesela Kurdistanê Bazîl Nikitîn
8 — Ji mesela Kurdistanê C. A. Bedir-Xan
9 — Elfabeya Kurdî Dr. K. A. Bedir-Xan
10— Xwendina Kurdî Dr. K. A. Bedir-Xan
11— Elfabeya min Dr. K. A. Bedir-Xan
12— Dersên Şerîetê Dr. K. A. Bedir-Xan
13— Çarînên Xeyam Dr. K. A. Bedir-Xan
14— Proverbes Kurdes. Medhelokên Kurdî Lucy Paule Margueritte û Emîr. K. A. Bedir-Xan Paris - 1937
15— Le roi du Kurdistan. Qralê Kurdistanê. Emir K. F. Bedir-Xan û Adolphe de Falgerolle. Paris - 1937
6— Der Adler von Kurdistan. Eyloyê Kurdistanê. Prinz K. A Bedir-Xan û Herbert Örtel Berlîn - 1937
17— Der Schnee Des Lichtes. Berfa Ronahiyê Şihrên Kurdî Prinz. K. A. Bedir-Xan û Dr. Curt Wunderlich Berlîn - 1937

# Kiryariya Hawarê

| | | |
|---|---|---|
| Salî | 500 | Qirûşên Sûrî |
| Şeşmehî | 300 | Qirûşên Sûrî |
| Sêmehî | 200 | Qirûşên Sûrî |

Xwedî û gerînendeyê berpirsiyar: 'Mîr Celadet Alî Bedir-Xan. Şam—Sûriye
Directeur Propriétaire: Emir Djéladet Aali dir-Khan. Damas—Syrie

SAL 10
HEJMAR 43

SÊŞEMB
5 GULAN 1942

# HAWAR

ANNEE 10
NUMERO 43

MARDI
5 MAI 1942

KOVARA KURDÎ ★ REVUE KURDE

TÊXISTIYÊN VÊ HEJMARÊ



ŞAM—1942
ÇAPXANA SEBATÊ

SAL 10
HEJMAR 43
SÊŞEMB
5 GULAN 1942

# HAWAR

ANNEE 10
NUMERO 43
MARDI
5 MAI 1942

KOVARA KURDÎ ✶ REVUE KURDE

## TEFSÎRA QURANÊ

69 — Birek cihî dixwazin we ji dînê we vegerînin, we şaş bikin lê ew bes nefsa xwe şaş dikin û pê na hesin.

70 — Gelî xudankitêbino...... ayetên Xwedê inkar mekin û pê kafir ne bin, hon delîl û hicetên pêxemberîtiya Bezma Mihemed xweş nas dikin.

71 — Gelî xudankitêbino.... li rastiyê cilên nerastiyê me kin, rastiyê veneşêrin, hon bi xwe dizanin.

72 — Ji xudankitêban hinan ji hinan re got: Destpêka rojê de, baweriya xwe bi Quranê bînin û dawiya rojê de bi wê kafir bibin, da ko misilman we bibînin û bikevin dudiliyê û ji dînê xwe vegerin.

73 — Gava cihiyên Xîberê ditin ko hîlebaziya wan bi kêr ne hat, ji cihiyên Medînê re gotine: Bi tenê bi mirovên ji dînê xwe bawer bin. Pêxemberê min, bêje wan: Dînê heq, dînê islam e û riya rast, riya Xwedê ye.

Cihiyên Xîberê ji cihiyên Medînê re digotin: Hikmet û zanin, gezû û kutefir bi tenê ji we re û ji xeynî we, ji tu kesî re ne hate dayin û baweriya xwe me yênin ko misilman li cem Xwedê dikarin berberiyê bi we bikin.

Pexemberê min.. bêje wan: Zanîn û kerem di destê Yezdanê pak de ne, ew ji kîjkî re dixwaze jê re dide. Xuda zana ye û zanîna Xwedê kûr û fireh e.

74 — Xuda ji kîjkî re dixwaze, pêxemberîtî û riya rastiyê dide, kerem û comerdiya Yezdan mezin e.

75 — Ji cihiyên xudankitêb hin hene ko tu ji wan re qentarek zêr bikî emanet, ew wî vedigerînin te û hin hene ko ji wan re zêrekî bidî, heta ko tu pê ne dî erdê, ji te re wî zêrî venagerînin; ji ber ko ew ji xwe re dibêjin, heçî ne cihî ne û Tewrat ne xwendine, malê wan ji me re helal e.

Ew bi xwe dizanin ko derewan dikin, Xwedê di Tewratê de tiştekî welê ne gotiye.

76 — Belê, gotina wan ne rast e, Yezdan ji mirovên xudan bext û camêr hez dike, ji yên ko gava ji wan re tiştek bi emanetî tê dayîn wê emanetê ji xwediyê wê re vedigerînin û ji Xuda ditirsin û destê xwe ji gunehan dikşînin.

77 — Ew cihiyên ko seba xatirê peran, emrên Xuda davêjin pişt guhê xwe, mana Tewratê diguhêrînin û bextê xwe xira dikin, ew ji nîmeta axiretê bê behr in, Yezdan di roja pişdawiyê de li wan na neyire, bi wan re na peyive, û wan ji gunehan paqij na ke. Ji wan re ezabekî giran heye.

78 — Ji cihiyên xudankitêb hin hene ko mana Tewratê guhartine û ew, wê guhartoyê bi devkî xweş dixwînin, da ko hon cihên Tewratê ên guhartî seh ne kin û wan cihan jî, ji eslê kitêbê bihesibînin. Ew dibêjin cihê he jî, ji eslê Tewratê ye; lê ne were ye; û dîsa ew dibêjin; ew jî ji nik Xuda ye; lê ew cihên he, ne ji nik Xwedê ne. Ew derewan dikin û pê dizanin; pirsên ko ne yên Xuda ne, dikin yên Xwedê.

79 — Ma layiqî mirovekî ye ko jê re Yezdan kitêb, hikmet û pêxemberîtî daye, rabe û ji xelkê re bêje: Dev ji Xuda berdin û bibin evdê min. Mirovekî wisa divê, li ser riya Xwedê bisekine, xweş hînî emrên Xwedê bibe û herwekî jê re hate gotin, ji xelkê re, dînê Xwe-

dê bide zanîn û pey emr û fermanên Xuda bimeşe.

80 — Ew ji we re nabêje: Pêxember û melyaketan bikin ji xwe re xwedî. Ma kengê ew piştî ko hon misilman bûne, bi kafiritiyê emrî we dike.

81 — Bînin bîra xwe... Xuda bi hemî pêxemberan li hev hat û ji wan re got: Piştî kitêb û hikmeta ko min. bi we da, ezê pêxemberekî rêkim, ew tesdîqdarê kitêbên li ba we, Tewrat û Incîlê ye. Divê hon baweriya xwe bi wî bi Bezma Mehemed binin û arikariya wî bikin.

Xuda ji pêxemberan pirsî: Gotina me yek bû, we soz da? Pêxemberan lê vegerand û got: Belê, gotina me yek e, me soz da.

Xwedê gote wan: Bibin şahidên vê soz û qerarê, ez jî bi we ra şahid im.

82 — Yên ko piştî vê qerarê xwe jê didin paş, ew minafiq û kafir in, fasiq û mizawir in.

83 — Ma ew, ji dînê Xwedê pê ve, dîneki dixwazin....

Her tiştên erd û ezmanan, bivê nevê bindestiya Xuda dikin, xwe dispêrin wî; û hemî dê vegerin ba Xwedê.

84 — Pêxemberê min.... bêje: Me baweriya xwe bi Xwedê û bi Qurana ko ji me re û bi kitêbên ko ji Ibrahîm, Ismaîl; Isheq, Yaqûb û çêliyên di Yaqûb re û bi Tewrat û Incîla ko ji Mûsa û Îsa re û bi kitêbên ko ji pêxemberên Xuda ên din re dahatine, aniye. Em tu ferqê naêxin di navbera wan de û me xwe sipartiye Xwedê û em xulamên wî ne.

85 — Yê ko ji dînê islamê pê ve dîneki dixwaze û dibe, ew dîn jê weke dîneki rast naye qebûl kirin û ew di axiretê de dixesire.

86 — Ma çawan Xwedê mileteki ko baweriya xwe tîne û piştre kafir dibe digihîne rastiyê.

Delîlên pêxemberîtiya Bezma Mihemed giha bû wan û wan bi pêxemberîtiya Canabê Mihemed şehdetî da bûn. Xuda qewmên zalim, nagihîne rastiyê.

87 — Eve cezayê wan; laneta Yezdan, melyaketan û laneta xelkê li wan e.

88 — Ew di vê lanetê de her dimînin, ezabê wan sivik nabe û tu kes li wan na neyire, li halê wan fenakire.

89 — Lê yên ko di piştre poşman û tobedar dibin û nefsa xwe islah dikin, bila bizanin; Yezdan ji tobedaran re tobe dide, Xuda mihrivan û piyar e.

90 — Lê yên ko baweriya xwe anîne û piştre kafir bûne û li ser vê pê dane erdê û wilo kifra xwe hêj zêdetir kirine, toba wan na ye qebûl kirin, ew mirovên rêşaşkirî ne.

91 — Yên ko kufir kirine û pê mirine, ew kafir in, heke li cem wan zêrê dinyayê hebe ji û ew wî zerî feda bikin jî, ji wan re xelas nîne; ji bona wan ezabekî dijwar heye û ji wan re tu arîkar nîne.

# HEDÎSÊN
## CENABÊ PÊXEMBER

REHMET Û SILAVÁ XWEDÊ LÊ BE

594 — Dewlemendî ne bi mal e, bi dil û comerdiyê ye.

595 — Girtina rojiyê ne ew e ko mirov dev ji xwarin û vexwarinê berde, lêbelê xwe ji gotin û îşê xerab jî bigire.

596 — Xurtbûn ne bi dest û lep e, Xurtbûn ew e ko mirov wexta xeyda xwe de bi nefsa xwe bikare, ji devê wî dijun dernekeve û ji destê wî xerabî çênebe.

597 — Gotin û dîtin wek hev na bin.

598 — Heqê siwara silava li peyan bike, heqê mirovê ji piya silava li ê rûniştî bike.

599 — Heke Xwedê di gunehên peyayên ko heywanên xwe diêşînin û barê wan giran dikin biboriya, kes gunehkar ne dima.

600 — Bi tenê bi gotina xelkê, bê delîl û isbat divê kes kesî ne êşîne.

601 — Heke hon tişteki xerab di hundirê şikefta de jî dikin ew tê ditin û bihistin, dev ji îşên xerab berdin.

602 — Ji bona her derî mifta wî heye, mifta bihuştê ew e ko mirov ji piçûk û belengaza hez bike û li balê wan binêre.

603 — Qurbana xwe bi anîna navê Xwedê û di riya Xwedê da şerjê bikin; laneta Xwedê li ser wan mirova be yên ko qurbana xwe li ser navê ewliya û enbiya, şêx û ziyareta şerjê dikin.

604 — Yên ko bêviya xwe bi nivişt û berbejna dikin, em dest jî ber wan hiltinin, bila berbejn û nivîştê wan, wan ji tengasiyê xelas kin.

605 — Milet hemî bi belayekê têşin, bela miletê islamê ji hakimê zalim in.

606 — Dirêj me kin, kin û rast bibêjin, bi axafitina zêde û bêrê xelkê ji xwe aciz me kin.

607 — Laneta Xwedê li wan be yên ko rû û laşê xwe dideqinin, birûyê xwe bi mûçinga zirav û dirêj dikin, porên li erdê mayi tînin û bi serê xwe ve dikin.

608 — Xwedê laneta li wan mirova dike yên ko di qehr û kerba xwe de rûyên xwe bi neynûka diqelêşin, cilên xwe diçirinin û diqetinin û qîr û wîr dikin.

609 — Cilên xwe ên kevn û pînekirî li xwe bikin, lê nûyê xelkê li xwe me kin, xwe me xin bin mineta xelkê.

610 — Li ser tirba miriya rûmenin, li ser sêla agir rûnin çêtir e.

611 — Mirovê ko di dema saxiya xwe de xêr û qencikê dike ji wî insanê ko li ber mirina xwe du sed xêr û xêratan dike jî bi xêrtir e.

612 — Xurtî û hikmê Xwedê ji ên we mezintir e, zor û çavsoriyê li xelkê me kin.

613 — Xelkê di bin xwe re me gire, tu jî di bin emrê Xwedê de yî, û Xwedê ji te mezintir û xurtir e.

614 — Gava hon rastî zaroka hatin silava li wan bikin.

615 — Ma Xwedê wê çawan ji miletê ko peyayên wî ên qels û belengaz heqê xwe nikarin ji yên ji xwe xurtir bistînin hez bike û li wan bê rehmê ?

616 — Bixwinin, bielimin û li gora zanîna xwe bimeşin, bi gotina xelkê xwe şaş me kin.

617 — Hakimên we jî li gora hezkirin û tifaqa we li we dinêrin, heke hon qedrê nefsa xwe nizanin, tadayiya hev dikin, hakimên we jî we diêşînin.

618 — Bixwin û vexwin çavfirehî û camêriyê bikin, lê bêrê pereyê xwe ma vêjin çolê.

619 — Xwarina xwe ji qiraxa firaxê bixwin, kevçiyê xwe mavêjin serê firaxê.

# HILBÎNA ÇIRAN

Feqeh Mistefa benda jêrîn berî heşt salan nivisandiye. Tê de du tişt hene ko dikevin ber çavan. Awayê nivîsandinê. Me ew weke xwe hiştiye ji bona ko bibe nimûneke zarê wî. Mistefa ji Kurdistanê hati bû Bêrûtê û di xaniki pakraxistî û têronî de rûniştî bû. Wî xaniyî û wan çiran ev bend ji Mistefê re daye nivîsandin.

Mistefa bi vê bendê ronî û medeniyeta ko li Bêrûtê ditiye ji bo welatê xwe ê xopan daxwaz dike.

Kurdistan heta niho weke şêveke tarî û dijwar bi, bi berf û bager û baranê. Kesî ne dikarî tê bigere û bê û biçe mala dost û heval û hogir û cîranên xwe; ji bo serdana hev, ka ki sax e, ki mirî ye; ji ber teqereka ezmana û birîska ko ji rojhelat û rojava derdiketin; digotin ev brîskên he ê li me bidin û me bikujin; em ne wêrin bên û biçin û bigerin.

Tirsihan, rûniştin malên xwe dé û berf bi ser wan de hat û ket û stwir bî û berfê ew nixumandin û ew manc bende û derneketin; beta çavên wam tarî bîn û pir bin û xerîfîn û bi kêri tu şolan ne hatin.

Di ser vi qasî re guriyên bar ji xwe kiri bin rexên riyan û kengê yek ji wan tê re bibore hemî bi hev re xwe bavêjin-ê û bigirin û bibên û birevinin û bêxin newaleke kwîr de û bixwin.

Paşê ev kurdên he pê hesihan ko guriyan xwe kirine kemîn û revde û xwe di pêşiya wan de veşartine û nikarin ji wan derbas bibin. Çinkî destvala bin; ne ko bêzirav bîn. kurd mane rawestayî di malên xwe de.

Eva guriya ji gelek ziyanên wa kiri bîn û pez û dewarên wa xwari bin. Nemaze berxên wa ên beli û serceleb û nîşankirî û beranên wa ên tov, ên ko dilê wan li ser dişewitî.

---

620 — Hon hemî şivan in û pirsa keriyê we ji we dibe; pirs û cihaba malê ji bav, ya xelkê ji mezinan û ya miletî ji hakiman têne kirin.

621 — Hon hemî însan in û kalikê we Adem ji axa reş hate afirandin, bi navê bav û kalê xwe.

622 — Xwe mezin me kin, mezinahî li gora kar û zanînê ye.

Heta çêşîtek welê ev guriyên he bin bî bin û dihatin eşkere radidan ser wa, ziyan û xesara wan dikirin û diçûn.

Yekî ji wan ne dikarî va guriya bikujit an ser xwe bidit rexekî. Ji ber ko ew bê çek û bê tifing bîn. Bi ser qîra didan. Gurî ji bi wa hesiban ko halê wa ev e; ji bilî qîra tiştek ji wa nayê. Vêca qenc hîn bîn û ne tirsiban; bîn nayarên ji dil û rast. Herçi tiştê ko kêfa wa xwest ji xwe re kirin û birin û xweyî hêliştin rwît weke marî û birçî weke xwe. Ê mir, mir; ê revi, revi. Halê me û wa ev e; ji xwe re bibînin û seyrê bikin.

Ev cîranên ko niho hazir in ji wan dûr bîn; ne dikarin li hawar û bangîna wan bên û van guriyan ji wan bidin alîkî û wan biparêzin.

Kengê hawar û bangin digihandin cîranan û ji wan re digotin em ketin bextê we de, hinek gurî hîn bine me, tiştek ji me re ne hêliştine, heta mirovan ji dixwin û har û devbixwin bine; em çar ji wa nakî. Cîrana xwe kar dikirin û dihatin wan biparêzin. Revda guriya diçû pêşiya wa; ew ji dixwarin û dixapandin, weke mesela gur û rêvi.

Paşê ew berfa stwîr bî şape û bi ser wa de hat; hwîr û gir û qor û zexim li ber xwe bir; û çiya û rêlên mezin û tari û têrdar jî heli û tîl kirin, weke deşlekê rast lê kir; û ew bê xudan hêliştin.

Lê çend zilam ji ber wê şapê kuta bin û saxû parazti derketin Spas ji Yezdanê pak re.

Ev zilamên he li hev civiban û kom bin û ji hev re gotin: Herê birano em tev birçi û tazî ne; keke qiyamet e, em ji diçin beke ne qiyamet e ji xwe hîn diçin û hin dimînin. Em li va dera bigerin û binêrin ka kesek li rasta me nayê; ji me re zadekî, avekê bidit; heta ko piyên me ax girtin û şidihayin.

Çûn û gerihan Ne mirov, ne heywan, tu tişt xuya nabit. Ditin ko gund û bajarên wa hemî bîne kavil û xirbe. Totik û pepok û goyîn û kundê kor, di wan de dixwînin û hêlînên xwe di şikêrê wan de çêkirine û kerbeş û kunmêrî tê derketine û kiloxên zilaman û jinan û zarowan bine weke sênca dora rezan; bilind bîne. Heywanan ew ji xwe re kirine gew û tê de rûniştine.

Gava hûsa dîtin agir di hinavê wa de şixulî û dilê wa şewitî. Serkol û pêxwas li dinyayê ketin û gerihan. Ji xwe re mêcbitî kirin nik xelkên biyenî. Ji xwe re malek nûjen çêkirin û danîn û peyda kirin û lêkdan û li hev guhdar bin û xebitîn. Ev mal danîn û binyana he ji her boş bî û kêm ne bi û kêm nahe.

Xwedê hez kir heta çêşîtek welê çend gund û bajarên xwe ên kavil û xirbe ava kirin û nav û dengê wan di dinyayê de gerihan û belav bin serê dijmin û neyaran ê nizim bibin û stoyên wan bête şikestin û çavên wa ê tarî bibin.

Ew zilam bine weke kerobîke du sed û pênci hejmar û hilawistî di nêva mezelekê ji wa ên rayexistî û xemilandî, bi her tiştên spehî ê taze.

Çiqas delal û rind e. Û mirov divê her lê binêre û tê de rûne. Mirov jê re heyran dibê û dimîne û pesnê vî ji her cihetî ve dide. Îro Kurdistan ji wisa ye.

# VEŞARTIN

DI ŞER DE XWE Û HER TIŞTÊN XWE VEŞARTIN

Ji roja ko çekên bi barût peyda bûne, di şer de xwe, çek û her tişlên xwe veşartin bû fenek û di talîmên eskerî de vê fenê hînî eskeran dikin.

Belê ev tişt, veşartin û xwe veşartin piştî derketina barût û hesinê bi qul hate rû. Berê ne tiştekî ewçend bi ehemiyet bû. Ji ber ko şerevaniyên bi şûr û xencer û rimh û gurz, beriya ko bigehin hev û çav bi hev bikin nikari bûn hevûdin biêşînin.

Ji xwe pêşiyan gotiye: piştî ko hesinê biqul derket mêranî ne maye. Lê binên din dibêjin ne ko mêranî ne maye; lê bûye bi nîvî; nivê din bû para fen û sinhetê.

Gava tifing nû derket şerevaniyên kevin ew ne ecibandi bûn. Dibêjin ko wî wextî yekî qeredaxî dijminê xwe bi tifingê kuşt û çû serê wî anî. Gava ew vegeriya nik hevalên xwe gote wan: ev hesinê dûravêj ne tu çek e; divêt mirov qederekî bi rê ve here da ko bikare serê neyarê xwe bîne.

Di vî şerî de veşartin ji şerên berê bêtir ehemiyet girtiye. Di şerên berê de bi siwarî û bi dûrebînan hevûdin bi tenê ji rû û ji teniştan keşif dikirin û li ser halên hev serwext dibûn. Lê îro bi balafiran şerevanî ji jor de ji halên hev dihinin. Ji lewre îşê veşartin û nixumandinê bêtir pêş ve çûye.

Herçi wextê bêrê û şerên kurdmancî dîtine divêt bizanin ko şerevanî gava diketin kozikan kolosên xwe ên dirêj, ji xwe dûr,

Bêrût 1934 M. EHMED BOTÎ

datanîn erdê û ew kolosên bêserî dikirin armanca neyarê xwe. Lê îro bajar û benderin bi temamî ji çavên dijmin têne veşartin. Di Düseldorf û Kolonyayê de elemanan ji texte û kertonê febrîkeyin çêkirine da ko balafirên ingilizî bên û li wan xin. Herçî febrîkeyên rastîn ew jî xistine şikilê xaniyên adetî.

Di şerê çîn û japonan de jî bo cara pêşîn çîniyan balafirgehên derewîn çêkirine û lê heykeline balafiran danîne. Japonî dihatin û li van balafiran didan û ew balafirên texte dişkênand û dişewitandin.

Herwekî xwendevanên me dizanin balafirên ingilizî gelek caran diçûn û li bendera elemanî Hembûrgê dixistin. Hembûrg wargehekî behrî ye û tê de tersaneke stola elemanî heye. Di vê tersanê de du hawiz hene; yeke mezin, a din piçûk. Ev her du hawiz bi rêhesineke digehin hev û rêhesin di ser pirekê re derbas bibe. Îngilizan dîkir vê pirê û avahiyên hawizan xerab bikin. Eleman rabûn li dirêjahiya rêhesinê dar danîn û her du hawizan ji qayixine welê teji kirin ko ew ji jor de wek xaniyên piçûk xuya dikirin Bi vî awayî pir û hawiz hatin veşartin. Elemanan di cihekî din de pireke derewîn û du hawizên din digel avahiyan çêkirin; hemî ji texte û kertonê.

Berî ewilî balafirên ingilizî pê xapiyan û bimbeyên xwe her û her berdidan pir û rêhesina derewîn. Lê piştre gava resmên ko beriya nixumandina pirê û yên ko di pey nixumandinê re hatî bûn kişandin danîn ber hev û balafirvanên ingilizî li hîla elemanan hişyar bûn. Resman şanî wan dida ko cihê pirê guhêrî bû.

Cenkeştiyên elemanî, Gneyzenaw û Şernhorst yên ko di Sibatê de di Manşê re vegeriyane welêt di bendera frensizî Brestê an di bendereke din de bûn. Balafirên ingilîzî heke ne hero be jî serê du sê rojan carekê bi ser wan de diçûn û ew didan ber bimbeyên xwe. Danezanan digot xisarine mezin gihane cenkeştiyên elemanî Lê ew bin av ne dibûn. Piştre hate seh kirin ko elemanan di bendera Brestê de mîna Şernhorst û Gneyzenaw du keştiyên derewîn çêkiri bûn û daxistî bûn behrê. Balafirên ingilîzî dihatin û bimbeyên xwe berdidan wan keştiyên sehwîr. Herçı cenkeştiyên rastîn ew di cihekî din de û bi awakî veşartî bûn. Bivê nevê ingiliz bi vê hîlê jî hesiyan û ji vaporên texte û kerton geriyan.

# CEBELTARIQ

Di rojên paşîn de û bi hênceta şerê Biharê ji nû ve çêlî Cebiltariqê tête kirin. Cebeltariq yek ji her du deriyên Behra spî ye. Deriyê din Swêş e. Swêş dikeve nîvrorohelatê vê behrê û di Behra-sor re Behra-spî digehîne Behra-hindî.

Herçî Cebeltariq e di roavayê Behra-spî de ye û bi vî deriyî ve Behra-spî digehe Etlantîkê.

Ji xwe ev her du derî ne biwan Behra-spî dibû golek û ne digihą behrên mezin. Ji xwe deriyê nîvrorohelê, yanî kenala Swêşê, hêj ne bûne sed sal ko hate vekirin. Heta hingê ehemiyeta Cebeltariqê ji îro bêtir bû. Lê herçî riyên Hindistan û Pesifîkê ji îro dirêjtir bûn.

Cebeltariq zinarekî nîvgirav e, di nîvroyê Spanyayê de ye û bi bejtengekê digehe erdê Spanyayê. Jê re Cebeltariq gotine ji ber ko femandarê erebî Tariq kurê Zeyad, di vê avtengê re derbasî Ewropayê bûye.

Heta sala 1704 an Cebeltariq di bin hikimê spanyolan de bû. Di vê salê de emîralê ingilîzî Bok ji nişkekê ve berda ser Cebeltariqê. Stola Bok di pêşiya bajêr de lenger avêt û ingilizan bajar û keleh zemt kirin û tê de cih bûn.

Hingê bajar di zikê zinêr de û ji çend avahiyan pêkhatî bû. Herçî keleh ew jî ne tişteki asê bû. Tê de hin tabiye hebûn. Ingilizan keleh xurt û asê kir. Di sala 1705 an de spanyolan dirêjî Cebeltariqê kirî be jî teşebisa wan ne çû serî, û ew bi şûn de vegeriyan.

Piştî ko ingiliz tê de cih bûn, herçî dewletên Ewropayê ên mezin, yên ko berê guh ne didan-ê çavên xwe berda bûn Cebelatariqê.

Di sala 1762 an, di wextê Lwî 15 qralê frensizan de genêral De Valyêr ji bo vegirtina Cebeltariqê planek çêkiri bû. Li gora wê planê mihacim di behir û bejê ve dirêji kelehê bikirana. 18000 piyade digel 100 topî ji bejê û sih cenkeştî ji behirê.

Di sala 1781ê de Kriyon gava diçû sefera giravên Baleârê bi tabiyeke nû dirêjî Cebeltariqê kir û wî ji siûda xwe ceriband.

---

Ji xwe digotin şer tep û hîle ye. Lê di vî şerî de ev tep gelek pêş ve çûye. Ewçend ko carina bajarine derewîn çêdikin û ew dikin armanca balafirên neyar.

**HESENÊ MISTÊ**

# BISERHATIYA

## KUMANDARÊ NOQAREKE ELEMANI

Rojnameke ingilîzî bêî ko navê wî ê rastîn bide zanîn biserhatiya kumandarê noqareke elemanî bi awayê jêrîn dide zanîn. Zabitekî elamanî, herwekî bi xwe wê bibêje, ketiye esaretê û di qerargaha hêsîran de biserhatiya xwe ji rojnamevan re gotiye. Rojnamevan navê Von Şleysen li zabitê elemanî kiriye û bi vî navî çêlî wî dike û dibêje :

Von Şleysen miroveki bejinavîn û zirav e. Bi qasî ingilizekî bi ingilîzî dizane û gava bi ingilîzî dibêje mirov nabêje ko ew eleman e. Emrê wî di dora sih û pêncan de ye, zewiçî ye û wî du zaro hene. Li ber min li

ser kursiki rûniştiye û biserhatiya xwe gili dike û dibêje :

— Ev cara pêşin bû ko em derdiketin seferê. Emê biçiwan dora Şotlandê. Li nivê şevê me terka Vilhelmshafenê da. Behir hinek bipêl bû. Ez pê bi kêf bûm Ji ber ko gava behir holê ye mirov dikare neynika didevaniyê ji derve bibile û dijmin nikare wê bibîne. Bi şefeqê ve min emir da ko noqar bikeve heta çil mêtiri binê behrê. Ji aliyê rohelê çend torpiyorên dijmin xuya kirin. Dîviya bû dora me de vaporên torpilavêj hebin. Em li wan geriyan lê me ew peyda ne kirin. Heta saet dehan em di binê avê de man.

Gava me da rûyê avê, me dît ko torpiyor jî bi dûr ketine û ji me ve naxuyin. Êdî em li rûyê avê man. Ji ber ko di dora me de tu vaporên dijmin xuya ne dikirin.

Piştî nivro saet sisiyan de dengek hate min : ji dûr ve dû dixûye.

Min terka kebîna xwe da û ez hilkişiyam jor. Belê ji dûr ve dûyek xuya dikir û ber bi me ve dihat. Di pey re qeretûx xuya kir. Min emr da ko torpilê hazir bikin. Vapor berê xwe da bû pozê noqara me û di riya torpiyorên ko me berî nivro dîti bûn diçû. Gava me dû dîti bû em keti bûn binê avê û wekê vaporê nizingi li me kir me dîsa da bû rû. Me noqar xiste weziyeta şer. Dilê min hiltavêt. Ev şerê me ê pêşin bû. Êdî em gelek nizingi hev bû bûn. Li ser vaporê qelebalixek çêbû û me dît ko mirovine bi cilên resmî gihaştine dora topekê. Me zanî ko bi me hesiyane û dikin li me xin. Min emir da ko torpilê bavêjin. Vapor yeke ingilîzî bû: lê min nikarî bû ez navê wê bibînim.

Min dît torpil di nav kefên spî û şinahiya behrê de riya xwe vedikir û ber bi vaporê ve diçe. Gelek ne borî pêlên behrê ber bi ezmanan rabûn û perçeyên hesin li dora me belav bûn. Me bingafti bû. Piştî sê deqîqan teqînine din hatine bihîstin. Min got qey vapor ji cebirxanê barkirî ye. Paşê me zanî ko torpîl li malika makinan keti bû.

Xelkê vaporê bi hev ketin. Deryavanan ber bi filûqan ve bezin. Du filûqe daxistin behrê. Deryevanan bi yeki ko cilên resmî lê bûn girtî bûn. Me zanî ko ew keptanê vaporê ye. Keptan bi çavine ziz li me difidkirî. Deryavan xwe tavêtin behrê. Dilê min bi wan ve ma bû. Min ne xwest xerqbûna wan bibînim. Min emir da, noqara me ket binê behrê. Min zanî bû ko mezinên min ji bona vî îşî ewê

---

Di pey re spanyolan bi xwe careke din dil kir ko ingilîz ji Cebeltariqê derînin. Lê ev teşebis jî ne çû serî.

Ji van pêve çend carên din frensiz û spenyolan berda Cebeltariqê û ew ji bej û behirê ve ebloqe kir. Lê hercar stola ingilîzî ebloqe vedikir û digihaşt hawara kelehê.

Lê iro çekên hicûm û midafehê û her tişt gnhêrtne. Ji lewre heke yekî dirêjî Cebeltariqê kir, wer dixuye ko rexma her tiştî wê bikeve bin barekî ji berê girantir. Ji ber ko ingilîzan asêgeha xwe gelek xurt kiriye.

Ingilîzan topên dûravêj di nav teht û zinaran de cih kirine; bi awaki welê ko bi tenê devên topan dixuyin. Mitralyozên 340 milimêtirî jî bi vî awayî hatine veşartin. Ji van mitrolyzan li Sengeporê jî hebûn.

Dibêjin ko di ber wan topan re tu cenkeştî, bi selamet nikare derbas bibe.

Ji aliyê din ingilîzan li her derên kelehê topên balafirşiken danîne. Ji milê din û vê paşiyê mihendisên ingilîzî bajareki binerdin çêkirine. Di wextê şer de, nemaze di hicûma balafiran de, esker û ehali xwe di wî bajarê binerdîn de wê veşêrin.

Lê herwekî me got Cebeltariq ne girav; lêbelê nîvgiravek e û bi bejtengekê bi bejê re girêdayî ye. Ji lewre dijmin herweki di mextê berê de bû, dikare di bejê re jî dirêjî kelehê bike. Ji lewre ingilîzan cihê bejtengê ê tengtir kola û tê de çalekê 50 mêtir dirêj û 6 mêtir kûr daye çêkirin. Bi vî awayî û di mehcetê de Cebeltariq di çend saetan de dikare ji bejê qut bibe û bibe giravek.

SILÊMANÊ FERHO

min piroz bikirina, lê ez bi xwe tu fexrê pê ne hesiyam.

Von Şleysen biserhatiya xwe a didowan û a paşin bi vî awayî gili kir:

— Dinya hêj nû zelal bû bû. Şevê pêde ez ne nivisti bûm. Dinyayê dikir ko ronî bibe; lê jê ne dihat; mijê ne dibişt. Mijeke kûr û tarî, me nikarî bû em pêşiya xwe bibînin. Noqara me hêi ko pêşiya xwe bib'ne diçû, berî ber bi armancê. Tirs hebû ko em bikevin ser torpilekê. Saet dehan de me hin tiréjên tavê ditin, lê gelek hindik. Wext bû bû nivro, perda mijê ji nişkekê ve çiriya Hêj me li ber xwe ne dîti bû ko zabiteki deng li min kir û got;

— Torpiyorek, berê xwe daye me....

Min emirê xwe da û got:

— Zû, li binê behrê

Torpiyorê em dîti bûn. Noqara me bi nîvî keti bû avê ko guleyek li ber pozê wê teqiya û noqar hejiha. Gule lê ne keti bû. Em jî bi temamî keti bûn nav avê û ji ber çavên torpiyorê winda bû bûn. Min dengê perwana torpiyorê dikir. Torpiyor di ser serê me re digeriya. Bihneke din, du bimbeyên binavîn di ber noqara me re teqiyan. Noqar çend caran çû û hat. Lê disan bimbe li me ne keti bûn. Qederê du saetan em di bin avê de man. Gava me da rûyê behrê, me dît ko torpiyor ji me geriyaye û winda bûye. Min destê xwe di ser eniya xwe re bir û anî. Xwêhdaneke cemidî jê dilop dikir. Me bir dibir ko heke kêlike din em noqî avê ne biwan emê welê noqî biwan ko careke din em dernediketin.

Heta êvarê em li rûyê avê man. Em di ber peravên Skoçyayê de bûn. Di van deran de vaporên peravîn ên kiçik gelek caran rasti mirov tên. Min ne dixwest torpila xwe bavêjim armanceke welê hûr. Ji xwe stoline ji wan keştiyan ji dûr ve xuya dikirin. Stoleke din, dîsan ji wan keştiyên hûr ber bi me ve dihat.

Min kumanda noqbûnê da. Em daketin heta sih mêtirî. Lê em ne digihaştin biniya behrê. Mêtironimayê şanî 32 mêtiran da. Biniya noqara me li tehtan ket. Me qesta pêşiyê kir. Lê bê fêde. Me rind guh da. Tiştek li noqarê diket û jê dengekî hesinî radibû. Min tavil zanî çi li me qewimiye. Em keti bûn nav toreke hesinî.

Min got, ber bi paş. Bêfêde, perwana noqarê li benine fola diket û dixişxişî. Ewan vaporên hûr ev tor avêti bûn û em keti bûn-ê. Li gora saetê roj ji mêj ve çû bû ava. Emê şeva xwe di nav noqara torgirtî de derbas bikirina. Lê sibe.

Min bani deryavanan kir û tiştê ko li me qewimiye gote wan û bi ser ve zêde kir: — Di pêşiya me de sê tişt hene: Teslîm bûn, an bi bimbeke binavîn mehiw bûn an bi destê xwe noqara xwe teqandin û tê de mirin. Niho bidin eqlê xwe û bêjin min hon kijanî dixwazin.

Deryavanan li hevdû nihêrt û deng ne kir. Zabitê mihendis bi selaveke eskerî qedimî û got:

— Kumandan! tu miroveki zewicî, xudan zaro û ciwan î ji. Û tu dizanî ko can şêrîn e. Te çawan xwest welê bike em bi qerara te razî ne.

Herçî ez, min nikarî bû 46 welatiyên xwe di biniya behrê de bi kuştin bidim. Min li zabitê mihendis venegerand; bî tenê gote hemiyan; bila herkes here ser karê xwe.

Herkes çû cihê xwe. Min ser hev çend qehwe vexwarin û min qerara xwe li deftera noqarê nivisand.

Ber bi destê sibê di xew re çûnî. Lê min xewnine ecêb diditin. Saet heftan de ez hişyar bûm û çûm kebîna nêrevaniyê. Tora hesinî wer li me geriya bû ko me pê re nikeri bû em li rûyê avê derkevin.

Heta saet yanzdeban em di vî halî de man. Ji nişkekê ve me dengê perwanekê kir û tiştekî giran ket ser pira noqara me. Me zanî ko dixwazin bi me re bidin bistînin. Me aleta mixaberê şixuland. Wan digot: «Rûniştimanên noqarê hon, di çi halî de ne, zindî an mirî..... Cebirxana xwe bavêjin».

Min li wan vegerand: « Em tev de zind ne û heta sê deqîqan di me de tu cebirxane namîne ».

Me cebirxane avêt û em derketin rûyê avê û ketin filûqeyên ko di dora me de digeriyan.

Herwekî tu dibînî her pênc zabitên wê noqarê di vê hêsîrgahê de ne. Dilê min her bi vapora ingilizî ve ye; ya ko min di sefera xwe a pêşin de bin av kiriye ».

**XELÎLÊ GENCO**

# KIRIYARIYA HAWARÊ

**Li 15ê Nîsana sala 1942an saleke belavbûna Hawarê temam bûye.** Ji lewre ji eboneyên Hawarê re divêt ji vê terîxê ve kiriyariyên xwe nû bikin û heqê kiriyariyê ji gerînendeyê Hawarê re rêkin.

Belê ev ji bo kiriyariyê ye. Lê vê sala belavbûnê ji milê din tiştine hêja şanî me dane. Me divêt em çêlî van tiştan bikin. Ji ber ko ew di tarixa çapa kurdan de niqteyine pêşveçûnê ne.

Di sala 1934an de gava Hawar nû belav bû ji xwediyê Hawarê re diviya bû di nav kurdan de bigere û kiriyariyên Hawarê bide hev. Hingê kurdan kiriyariya Hawarê didan, lê bi vî şertî, yanî gava xwediyê Hawarê diçû cem wan û ji wan dixwest. Lê vê carê holê ne bû. Kurd ji xwe ber bi Hawarê mijûl bûn û mil dane ber. Belê mirovine nenas, xortine belengaz, wek xortên miletên pêşveketi, pênc kaxezên xwe dikirin nav zerfekê de û ji xwediyê Hawarê re dişandin û nav di xelkê didin û digotin arikariya Hawarê bikin. Hawar kovara me a tekane ye; divêt ew bijît, jiyandina wê li ser me ferz e. Û Hawar jiyiya û di salekê de li şûna 12 caran 16 caran belav bû. Di saleke welê de ko her tişt beha bûne. Belê kaxeza ko berê bi qemerikî bû îro bi panzdeh qemeriyan nayete kirin. Her tişt bi vî awayî.

Ji milê din mezin û dewlemandên kurdan jî bi diyarîna arikariya Hawarê kirin. Divêt em çêlî wan jî bikin. Di nav wan de nemaze serekê eşîra Hevêrkan; Hesen axa Haco bi diyarike giranbeba hate serdana Hawarê. Belê vê paşiyê gava Hesen axa hate Şamê 400 lîreyên sûrî dane Hawarê. Hesen axa gava ev pere dane Hawarê digot ; Min kuntiratek stand û jê çend pere kar kirine. Ji vê karê min para Hawarê hilanî; ev e para Hawarê.

Belê Hesen axa bi vê diyariyê pêşî ji hemiyan stand. Digel vê hindê em mirovên ko ji kiriyariya resmî bêtir û bi navê arikariyê pere dane Hawarê nikarin ji bîr bikin. Di vê navê de nemaze kurdên Şamê gelekî bi kêr hatin; di şevekê de 200 kaxez dane hev û ji nû ve derêxistina Hawarê têmin kirine.

**Em digel şikraniya xwe navên mirovên ko ji 5 kaxezan bêtir pere dane Hawarê li kire belav dikin :**

| | Lîreyên Sûrî | | Lîreyên Sûrî |
|---|---|---|---|
| Hesen axa Haco | 400 | Şêxmûs axa Hacî Xelef | 15 |
| Elî axa Zilfo | 50 | Lêzgîn axa | 12 |
| Mehmûd axa Zirkî | 50 | Arif beg Ebas | 10 |
| Dr Ehmed Nafiz beg | 30 | Şêx Mihemed Zekî | 10 |
| Mihemed beg Cemîl paşa | 25 | Yekî Serhedî | 10 |
| Silêman efendî Qotreş | 25 | Mihsin beg Berazî | 10 |
| Emer axa Şemdîn | 20 | Memdûh Selîm beg | 10 |
| Bekir axa Alosî | 20 | Mihemed Elî axa Sêxmûs | 10 |
| Ehmed axa Qereçolî | 20 | Mihemed Hec Evdê axa | 10 |
| Qedrî beg Cemîl Paşa | 15 | Nizamedîn beg Kubar | 10 |
| Ekrem beg Cemîl paşa | 15 | Bedirxan axa | 10 |
| Bedrî beg Cemîl paşa | 15 | Dr Nûrî beg | 10 |
| Miqdad beg Cemîl paşa | 15 | Receb axa Zilfo | 10 |
| Faiz beg kurdî | 15 | Tahir beg Bedir-Xan | 10 |
| | | Xanimekê | 10 |

Ji mezin û dewlemendên kurdmancan hin hene ko navê wan ne ketiye lista jorîn. Ji ber ko wan hêj tiştek ne daye. Heye ko rê bi wan ne ketiye. Gava ew jî bidin, emê navên wan jî dê belav bikin.

Me got ko her tişt beha bûye. Lê me kiriyariya Hawarê zêde ne kir. Xwendevanên me bi xwe, bivê nenê vê behabûnê wê derpêş bikin û ji bona sala nû, herkes li gora halê xwe tiştekî bi ser kiriyariya resmî ve dê zêde bike. Lê heçî halê wan tenik e bila dîsan pênc kaxezan bişînin, me ji wan qebûl e.

* * *

Ji yêkê Nîsanê ve me dest bi belavkirina kovareke din kiriye: Ronahî.

Ronahî kovareke bi resim û sûret e. Di tarixa çapa kurdan de tiştekî nû. Belê heta niho tu kovarên kurdî bi resim û sûret belav ne bûne. Ji lewre belavbûna Ronahiyê di jiyîna me a milî û civakî de bûyereke girane ye.

Digel vê hindê ne Hawar ne Ronahî ne jî çend kovar û kurazeyên din nikarin kitêbxana me a milî û civakî ya ko yekcar vala ye tijî bikin. Ev her du kovar dilopine behireke mezin in; dilopine behira zanînê ne. Di vê behirê de ji me kurdan bêtir kêmpar tu milet nîne. Heçî miletê ko îro doza heq û heyîna xwe dike divêt di vê behirê de xudanpar bibe; lê ne bi dilopan, belkî bi çal û çalik û gotikan.

Belê, ava çalan jî bi dilopan têne pê û her miletî ji holê dest pê kiriye. Bi tenê divêt dilop bidin pey hev. Heke ewan ne da pey hev dilopên pêşîn di singa axa bişk de winda dibin.

Me kiriyariya Ronahiyê ji kiriye 5 lîreyên sûrî. Lê me hêvî heye ko ji xwendevanên me

# DÎWANA MELÊ

— 22 —

Tu sehergeh were bazarl hidûs
Li te bê faîde azar nedif xari hidûs
Da ji dil xuncelebê nazik û dirdane perî
Bi tebes-sim bi te ra bêt ji gulzari hidûs
Sed gireh min di dil in çep û rastê wê dikir
Şahidê hisnî qidem zilfi girehdari hidûs
Bil ji siltani qidem min bi te iqrar nehin
Ger li kapan nehin menqebi dew-wari hidûs
Dil di deryayi qedem qaf e; bi sabit qedem î
Gerçî daîm li serê ferqe me minşari hidûs
Belkî diwar bi guh bin bi Xwedê kî bi Xwedê
Bi tu rengî ne gerî eşkere esrari hidûs
Lemheyek ger ji kenarê qedemî pertewê det
Dê ji her wê seetê mehiw bine enwari hidûs
Ser bi sed pencereyan daye şiaya qedemê
Kunbeti eşq li ser kursiyi dîwari hidûs
Tu hidûsê wer bibîn qenc nezer dih carek
Li esasê qedemê daniye diwarê hidûs
Here estê xwe û tertîb û qiyasê jêke
Ger nizanî çi ye yekcar berê dari hidûs
Ateşi eşq şibhi zêr wê wicûdê hel kei
Heye mimkin ne firit zeybeqi fer-rari hidûs
El-lah el-lah tu di emrê xwe te carek ne bihî
Çi seda têt ji vê kunbedi dew-wari hidûs
Tu ji ber perdeyî wehmê were der da bibihî
Çi newa têt bi sed nexme li ewtari hidûs
Hal û misteqbel û mazî di xwe da têk yek in
Sibhe mewcûd e bi eynê xwe di êvari hidûs
Rast û çep gav û seet her li me da derbê nebit
Zilfiqari qedemê heyderi ker-rari hidûs
Rast û evraz û nişûvê mi biwartin yek û yek
Lê tenê wê li me bû daire berwari hidûs
Dê li qelbê me çi det lamiayê islamê
Ko li canê xwe me xef bestiye zen-nari hidûs
Reng û jengê hedesê neqşê bidûsê me di dil
Bide ber rindeşi eşqê ev e qes-sari hidûs
Can li ser dest nihaî di riya canan da
Rûhi sef sef ko vewestane di bazarê hidûs
Lê ji xeflet biretin saye zewalê ey dil
Rûnenî da tu emanet bi siya dari hidûs
Da nigarê xwe bi sed rewşî bibinî îro
Were carê bike seyrê tu di etwari hidûs
Tu bi halê me dizanî çi ye her lehze Mela
Me di dil têt û derit xenceri xed-deri hidûs.

Qesîda 15an di hejmara 4oî de nîvco hate belav kirin. Yanzdeh malikên wê ên pêşin kêm in. Em wan malikan li jêr belav dikin:

Ger ji wê hûrisirîştê işweyek izhar bit
Dê bibit narê hebibil-lah û dojeh sar bit
Ger ji ber perdê yedi beyza bi mi'ciz bête der
Şems û kewkeb dê hilên alem tijî enwar bit
Wer ji eksa xumriyan qewsi qezeh det yasemîn
Dê gul û rihan bibarin têk ve erd gulzar bit
Şemhê dê can det ji şewqê bête ger siphî nefes
Narit axir ger bi mûyek behsi zilfê yar bit
Dê xeta bit nafei misk er nafei tatar bit
Toq û gerden helqeya zin-nari zilfa yari min
Dê kilita qelbê eşqê helqeya zin-nar bit [1]
Eqda ihramê di eşqê da ko pîrê eşq bit
Dê çi xem ger xerqe rehnê xaneyê xem-mar bit
Gezmeyek qewsê şevîn aşiq bi nêva dilkevit
Dê ji can destan bişot xesma [2] kevan nûbar bit
Ger ji qewseynan bi nizan bête der cotek xedeng
Dê ceger bit pare pare sine tarûmar bit
Xwîn ji mêlakê bi derba xencerê ko hate der
Bo şehidê eşqê êdi dê ji kû hişyar bit
Dê ji wan lehian şifayê dil bi qanûn tobe kit
Da işaret xweş bikin dê berkesî bîmar bit
Bilbilê mecrûhê eşqê .........

[1] Dê kilita qelbê eşqê da ko pîrê eşq bit
[2] xasan

# REWŞA DINYAYÊ

ENÎKE NÛ — Ji mêj ve ye ûris dibêjin, li Patzê me êrişa elemanan di pêşiya Moskovê de sekinand, Zivistanê pê de me şerê wan kir, di hin deran de me ew bi şûn de vegerand û me xesarine mezin gihande ordiwa Hitler. Lê di şerê Biharê de divêt arîkariya me bête kirin, ji arîkariya çek û cebirxanan pê ve; divêt hevalbendên me esker derînin peravên Ewropê ên roavê û ji par re li elemanan xin. Ji hevalbendan mexsed nemaze Jngiltere bû. Terefdarên vê fikirê li Ingilterê ji hebûn. Ji xwe bi vi awayî û bi derbekê ingiliz wê bikarin zora elamanan bibin.

Lê Ingilterê ji bo vi işî karê xwe hêj teman ne kiri bû û Ingiltere bi tena xwe bû. Lê iro li rex Ingilterê Emêrike ji heye. Herweki xwendevanên me dizanin eskerên emêrikanî dest bi hatina Ingilterê ji kirine. Emêrike eskerên xwe li bakurê Irlandê kom dike. Vê paşiyê rêisê erkanherbiya Emêrikê general Merşal ji hate Ingilterê û qedereki lê ma.

Berê digotin Ingiltere û Emêrike di sala 1943an de wê esker derînin Ewropayê û li elemanan bidin. Lê di rojên paşin de ev fikir hate guhartin. Îro dibêjin ingiliz û emêrikanî ewê îsal derkevin beja Ewropayê. Ji ber ko elemanan piraniya eskerê xwe li qada ûris heşidandiye û di roavayê Ewropayê de qewe-

ên demlewend yên ko tu diyarî rênekirine Hawarê vê kasûliyê bi hênceta belavbûna Ronahiyê wê bi şûn de vegerînin. Bi vi awayî ronahî ji weke Hawarê, rexma dilaxêva kaxezê, wê bikare bijî û kurdan du kovar û di behira zanînê de li şûna dilopekê du dilop wê hebin.

XWEDIYÊ HAWARÊ

teke gelek kêm hiştiye û Elemanye di vê eniyê de tucaran evçend kêmqewet namine. Jî milê din heke ûris di pêşiya êrîşa elemanan de bi tena xwe maye, heye ko nikare li ber vê êrîşê bisekine.

Qinyata hawirên sondxwariyan û ya bêterefan ev e. Yanî dema ko eleman dirêji ûrisan bike ingiliz û emêrîkanî jî wê dakevin beja Ewropayê û ji par re li elemanan bidin û elemanan bêxin nav du agiran de.

ŞERÊ PESÎFÎKE — Herwekî xwendevanên me dizanin ji roja ko şerê Pesîfîkê dest pê kiriye şer di erdê ingiliz û emêrîkaniyan de çêdibe û ev her û her erdine xwe ji dest didin. Ji ber ko van ji bo vî şerî weke japon xwe kar ne kiri bûn. Lê li 18ê Nîsanê û ji nişkekevê balafirên emêrîkanî di ser erdê Japonyayê re firiyane û li Payîtextê wan li Tokyoyê û li hin bajarên din xistine.

Ji ber ko emêrîkaniyan di vê babetê de hêj tu danezan belav ne kirine me qenc nezanî mixdarê xesara ko gihaştiye japonan çi ye ? Herçî japon in dibêjin xesar hindik in.

Lê bi tevayî divêt bajarên japonî ji êrîşên hewayî gelek xesardîde bibin.

Ji ber ko di erdê Japonyayê de gelek zinzal çêdibin; yanî erd diheje, ji lewre japonî xeniyên xwe ji textê çêdikin û dîwarên wan xaniyan ji kaxezê ne; kaxezeke welê ko di bin makînan de hate dewisindan. Bi vê dewisandinê ew kaxez dibin depine hişk û qahîm. Digel vê hinde texte texte ye, kaxez jî kaxez e.

Ji lewre divêt bajarên japonî, wek bajarên ewropayî, li ber bimbeyên balafiran nikarin bisekinin.

Bi tenê tiştek heye, ew xanî zû hilweşin jî naşewitin. Ji ber ko di texte û kaxezên wan xaniyan de madeki welê heye ko agir bi wan nakeve. Mîna kerîonên girover, yên ko dikin ser vaporên primûs û pê tehna agir dişkêninin.

Japonye ji bej û wargehên Emêrîkayê gelek dûr e. Ji lewre balafirên emêrîkanî çawan nîzingî li erdê Japonyayê kirine. An balafir bi balafirhilgiran hatine heta peravên Japonyayê an ji erdê Çîna nevegirtî firiyane. Herçî ji hebe ev îşekî zehmet bû û sondxwariyan gelek kêfa xwe jê re anî.

Li gora nûçeyên rohelatê dûr Emêrîkê ev balafir rêdikirin ordiwa Çînê. Balafir li ser balafirhilgiran hetine heta nîzingî Japonyayê û jê firiyane û piştî ko li Tokyo û li bajarên din xistine berê xwe dane roavê û çûne Çînê. Herçî belafirhilgir piştî ko balafir ji wan firiyane vegeriyane wargehên xwe. Ji lewre japonan da be ji pey vaporên balafirhilgir nikari bûn xwe bigehînen wan.

Şerê Filîpînê bi temamî safî ne bûye. Emêrîkaniyan piştî ko terka nîvgirava Batanê dane kişiyane ser girava Korêgîdorê. Li Batanê 60000 eskerên emêrîkanî ketine destê japonan. Ji lewre divêt di Korêgîdorê de eskerên emêrîkanî hindik bin. Lê ew esker bi xurtî û mêranî li ber xwe didin. Eskerên emêrîkanî top û mitrolyozên xwe veşartine nav zinarên giravê û şerê xwe xweş dikin. Japon jî, herwekî eleman li Maltayê dikin, her û her Korêgîdorê didin ber bombeyên balafirên xwe. Lê emêrîkanî pê li erdê didin û teslîm nabin, û kes nizane şerê Korêgidorê hêj çiqas wê dom bike. Ji ber ko şikênandina mêrên qene ji şkênandina top û tangan jî dişwartir e.

Rewşa Ewistralyayê weke xwe ye. Wer dixuye ko emêrîkaniyan gelek esker, balafir û çekine din anîne Ewistralyayê û hêj jî dîtînin. Balafirên japonî gelek li bender û wargehên Ewistralyayê da bûn. Herkesî digot qey dilê wan heye esker derînin Ewistralyayê jî. Lê ev tişt çênebû û li gora pisporên eskerî êdî nikare çêbibe ji; japonan ev firsend ji destê xwe revandiye.

ŞERÊ ROAVÊ — Şerê roavê ew şer e ko di roavayê Ewropayê de û di navbera ingiliz û elemanan de çêdibe. Ev şer îro bi tenê di hawan de ye. Ji ber ko di beja Ewropayê de ingiliz ninin û hêj lê venegeriyane.

Ev şer di van rojan de xurt bûye. Bi sedan balafirên ingilizî di ser Manşê re derbas dibin û li bajarên Frensa vegirtî û li bajarên elemanan didin. Dibêjin ko ingiliz bi van hicûman dihingivînin du armancan: ferbrîke û destegahên ko ji bo elemanan dixebitin û ji wan re çek û posatan çêdikin xerab dikin û ji milê din elemanan mecbûr dikin birekî balafirên xwe di vê eniyê de bihilin û nekarin wan hişinin eniya ûris Ji xwe dibêjin ko ingiliz li şûna ko esker derînin beja Ewropayê heye ko bi van hicûmên hewayî bes bikin û bi vî awayî arikariya ûrisan bikin. Lê herçî ûris pê didin erdê û dibêjin ko bêî ko ingiliz û emêrîkanî esker derînin Ewropayê barê me sivik nabe. Bivê nevê, di vê babetê de gotina paşîn ji erkanherbiya sondxwariyan re ye. Gelo wê çi bibêjin û wê çi bikin. Tiştê ko bikin divêt di van rojan de xuya bikit.

PIRSA FRENSÊ — Herwekî xwendevanên

me dizanin roja ko hikûmeta merêşal Pêten bi elemanan mitarekeyek imza kir — 22 Hizêran 1940 — frensizên ko pê qail ne dibûn, terka Frensê dan û di bin serkariya genêral De gol û di Londrê de encimenek çêkirin û dan zanîn ko ewê di rex Ingilterê de bimînin û şerê elemanan bikin. Bi vî awayî frensiz bûne du bir yên ko xwe bi merêşal girtine û yên ko dane pey De Gol.

Di hikûmeta Merêşal de Laval, yek ji serakwezîrên Frensê, bû bû serekwezîr û siyaseta dewletê digerand. Ji nişkekê ve Merêşal Laval avêt û emîralê stolê Darlan anî şûna wî. Hingê Laval gelek meyildariya elemanan kiri bû û ji lewre Pêten hikim ji destên wî standin û ew kirin destên emîral Darlan.

Digel vê hindê ingilîz û hevalbendên wî ji emîral Darlan jî ne razî bûn û digotin heye ko Darlan stola frensizî teslîmî elemanan bike. Lê Darlan, herçend bi elemanan gelek da û stand, lê ev tişt ne kir.

Herçî Laval çû bû Parîsê ê lê rûniştî bû. Carina qala wî dikirin, lê bi awakî resmî têkilî îşê hikûmetê ne dibû. Lê ji pêşiya vê mehê ve çend caran Laval û merêşal Pêtan hevûdin dîtin. Di dora van hevdûditinan de gelek kurt û pist çêbûn. Hinan got rast e, hinan got derew e, lê îro kirdeyek li ber çavên me ye. Ji 20ê Nîsanê ve Laval serekê wezareta Vîşiyê ye. Herçî wezaretên daxilî û xariciyê ne ew jî di destê Laval de ne. Ji xwe Merêşal di nitqeke xwe de da zanîn ko siyaseta Frensa a daxilî û a xaricî her diwan bi destê Laval dê bêne gerandin. Herçî emîral Darlan bûyê serfermandêrê qewetên bej û behir û hewayê bêî ko bibe wezîr. Lê emîral wê bikare bikeve mizakera meclisa wezîran; nemaze gava mizakere li ser midafeha Frensa û kişwerê wê ye.

Bi vê guhartinê, bêşik hikûmeta Vîşiyê, bêtir nizingî li elemanan kiriye. Lê ji vê nizingbûnê hêj tu kirde ne hate der.

Laval piştî ko hikim xiste destê xwe gotarek yanî nitqek da û got: « Di kanûna sala 1940î a pêşin de gava min hikim ji destê xwe da min Frenseke xurt hişti bû. Du salên bêbextiyê Frense xistine halê îro. Merêşal îro hikim xiste destê min. Digel emîral Darlan ezê cehda xwe bikim Frensê ji erdê rakim. Em di saetine dişwar de dijîn. Welat di nav zivarî û sefaletê de vedigevize.

Ji sala 40î ve daîra şerî hêj firehtir bûye. Frensizino! honê qebûl bikin ko hin frensiz yên ko bêbextî û xiyanet li welatê xwe kirine herin di hin erdên kişwerê we de rûnin. Ingilîzan piştî ko em xistine şer û piştî ko em di qada şer de di tena xwe hiştine û stola me bin av kirine; îro jî dixwazin kişwerê me ji destê me bibin.

Frensizino! ez berê xwe didim we û arîkariya we dixwazim. Heke we dil kir Frense wê bikare di Ewropa nû de serê xwe bilde û bi şeref û rûmet cihê ko sezayî wê ye bêxe destê xwe ».

Dîdevanên ko gotara Lavêl mana kirine dibêjin ko niyeta Laval heye dirêjî erdên Frensa aza bike. Di wan ardan de frensizên aza ne bi tena xwe ne; di her derê de ingilîz bi wan re ne. Heke Laval tiştekî welê kir ewê şerê ingilîzen ji bike.

ŞERÊ ÛRIS — Di vê eniyê de şer weke xwe dom dike, êrîş û berêrîşa her du aliyan. Di rojên paşîn de ûrisan êrîşên xwe kêm kirine. Dibêjin ko ûris jî di hin derên eniyê de xwe ji nû ve kar dikin û ji lewre êrîşên xwe hinek sist kirine. Digel vê hindê danezanên rûsî dîsa dibêjin, me çend gund bi şûn de vegerandine, lê wan gundan bi nav nakin. Herçî şerê balafiran ji bervajî ve di rojên paşîn de xurt bûye. Ji ber ko neyaran li rê û eskergehên hev dixin û dikin kom kirina eskeran ji hev re zehmet bikin.

Ji milê din balefirên elemanî, nemaze, zora xwe dane bendera Mûrmanskê. Ev bender dikeve bakurê Rûsyayê û gelek bi ehemiyet e. Ji ber ko emêrikanî ji ûrisan re di wê benderê re çek û cebirxanê dişînin. Balafirên elemanî ji sed carî bêtir li vê benderê xistine. Digel vê hindê çûn û hatina vaporan di vê benderê de qut ne bûye.

Ev tiştine bêehemiyet in. Şerine kiçik in. Lê hemî dinyayê îro diperse û dibêje: Bi piranî, berf di Rûsyayê de jî heliyaye; nemaze ji Moskoyê heta Behra reş; ma gelo çire êrîşa Biharê hêj dest pê ne kiriye. Bi rastî berf heliyaye û derece di Rûsya navîn de di ser sifrê re heta 25an ji rabûye. Lê êrîşa elemanan hêj dest pê ne kiriye.

Herçî par şerê ûris li 22ê Hizêranê dest pê kiri bû. Gelo elemanen çire beriya wê tarixê dest pê ne kiri bûn. Ji ber sebebên hewayî an ji ber sebebine din. Em pê nizanin; lê tiştê ko em dizanin Zivistana Isal gelek xurt bûye û pir dom kiriye û hatina Biharê bi derengî ketiye. Ji lewre divêt tidarikên elemanan jî ji adetê der, bi şûn de ma bin Di vê babetê de gotin zehf in. Hin dibêjin ko ev êrîş li peşiya Gulanê, hin dibêjin li nîvê

# RECTIFICATION

**A la suite d'une erreur de mise en page,** le passage de l'étude de notre collaborateur Tawûsparêz sur les jeux kurdes (Hawar N° 42) compris entre les lignes 40 de la page 11 (1ère colonne) et 20 de la page 12 (2e colonne), et qui forme la fin de l'article, s'est trouvé intercalé au milieu du texte.

---

Gulanê wê dest pê bike. Li gora pisporine din ev êrîş beriya Hizêranê nikare dest pê bike.

ŞERÊ LÎBYAYÊ — Di vê qada şer de tiştekî nû nine. Balafirên mihwerê her û her li girava Maltê didin û jê nagerin. Heta niho ewan belafiran ji du hezar carî bêtir li Maltê xistiye. Digel vê hindê ev girava piçûk digel her tiştên xwe di cihê xwe de ye de û topên wê ên balafirşiken li dijminan vedigerine.

ŞERÊ HINDISTANÊ — Gelo japon dil heye dirêjî Hindstanê jî bike? Ji xwe ji roja ko japon ketine Birmanyayê hesêb şerê Hidistanê dikin. Ji xwe ji milê din li Seylan û Madrasê jî xistine Li ser vê yekê fermandariya ingilizî emir da chaliyan ko herçî di midefeha giravê de ne xudankar in terka giravê bidin. Jê dixuye ko fermandariya ingilizi mimkin dibîne ko japon esker derinin Sêylanê jî. Ji xwe pisporên Londrê ên eskerî dibêjin ko pişti safî bûna şerê Filipînê di destê japonan da 100000 eskerên bêkar diminin. Ji van pisporan ve japon van eskeran bînin qada Hindistanê. Ji lewre gelek mihtemel e ko di van rojan de di vê qadê de şerine mezin çêbibin û japon berdin ser Seylan û Kelkotayê.

Ingilîz bivê nevê ehemiyeteke mezin didin îş û şerê Hindistanê. Ji lewre dil kirin îşê Hindistanê safî bikin û hindiyan bikin hevalbandên xwe. Lê hindiyan pêşmihada ingilîzan bi şûn de vegerand û her tişt weke xwe ma.

Herçî Birmanya ye; şer tê de dom dike. Ingilîz û çîniyan pişti ketina Tongoyê xwe daye paş. Di Birmanyayê de birên petrolê hene. Japon gihaştine heta wan biran. Lê ingilîz beriya ko jê rabin ew bîr xerab kirine û avahiyên wan şewitandine.

Emêrikanî di vê qadê de jî arikariya ingilîzan dikin. Ji xwe li Birmanyayê dalafirvanên wan hebûn. Vê paşiyê eskerên emêrîkanî bi her texlît çêkên xwe ve gihaştine Hindistanê.

Şam : 27 Nisan 1942 — NÊREVAN

# BINGEHÊN

## GRAMÊRA KURDMANCÎ

BI NAVÊ YEZDANÊ PAK Ê DILOVAN Û MIHIRVAN

— 13 —

97 — Pronavên işarkî ên qersene sê pronav in : yê, ya, yên. Ev pronav li kes, tişt û heywanan bêî ko dûr an nizingbûna wan bidin zanîn işaret dikin û di komekê de hergav kirar in û tucaran nabin bireser.

Yê ko hat birayê min bû.
Yên ko hatin birayên min bûn.
Ya ko hat dotmama min bû.
Yên ko hatin dotmamên min bûn.

Herwekî di mîsalên jorîn de tête dîtin ev pronavên ha tucaran ne bi serê xwe ne û hergav bireserek dide pey wan. Ev bireser jî pronava girêkî « ko » ye.

98 — Ha. Ev bêje ji texlîtek psonaveke işarkî ye. Ev pronav dikeve paşiya pronavên işarkî ên pivene û bi veqetandekê digehe wan û fikira işaretkirinê xurtir dike :

| | | |
|---|---|---|
| Evê ha | Eva ha | Evên ha |
| Ewê ha | Ewa ha | Ewên ha |

Jî milê din ev pronava ha dide pey navdêran jî û bi veqetandekê bi wan ve dibe.

| | |
|---|---|
| Mirovê ha | Mirovên ha |
| Jinika ha | Jinikên ha |

ŞANEK — *Hin pronavên işarkî, di zimanê devkî de, cih cih ketine şikiline din û esilê xwe winda kirine. Ev tişt bi lihevxistina pronavên işarkî ên pivene bi pronava « ha » hatiye pê.*

| | | |
|---|---|---|
| Evê ha | Eva ha | Evên ha |
| vîna | vêna | vêna |
| Ewê ha | Ewa ha | Ewên ha |
| wîna | wêna | wêna |

Di vî şikilî de mê û nêr yanî zayendê bêjeyê dîsan xuya dike. Lê tiştê ko li aliyê rojavayê welêt qewimiye ev ferq jî ji ortê rakiriye û bi tenê ferqa mêjer hiştiye.

| | | |
|---|---|---|
| Evê ha | Eva ha | Evên ha |
| vaya | vaya | vana |
| Ewê ha | Ewa ha | Ewên ha |
| waya | waya | wana |

Nemaze ev şikil bi tu awayî nikare bikeve zimanê nivîskî.

( dûmahîk heye ) C. A. BEDIR-XAN

# Kitêbxana Hawarê

Hejmar:

1 – Rêzana Elfabiya Kurdî C. A. Bedir-Xan.
2 — Rupelnine Elfabê C A Bedir-Xan.
3 — Dilê Kurên Min Dr. K. A. Bedir-Xan.
4 — Bîyişa Pêxember. Bi Kurdiya dumili, bi dibaca C. A. Bedir-Xan
5 -- Nivêjên Êzediyan bi dibaca C. A. Bedir-Xan
6 — Mektûb ji Mistefa Kemal paşê re
7 C. A. Bedir-Xan
1 – Mesela Kurdistanê Bazil Nikitin
8 — Ji mesela Kurdistanê C. A. Bedir-Xan
9 — Elfabeya Kurdî Dr. K. A. Bedir-Xan
10— Xwendina Kurdî Dr. K. A. Bedir-Xan
11— Elfabeya min Dr. K. A. Bedir-Xan
12— Dersên Şerîetê Dr. K. A. Bedir-Xan
13— Çarînên Xeyam Dr. K. A. Bedir-Xan
14— Proverbes Kurdes. Medhelokên Kurdî Lucy Paule Margueritte û Emîr. K. A. Bedir-Xan Paris - 1937
15— Le roi du Kurdistan. Qralê Kurdistanê. Emir K. F. Bedir-Xan û Adolphe de Falgerolle. Paris - 1937
6— Der Adler von Kurdistan. Eyloyê Kurdistanê. Prinz K. A Bedir-Xan û Herbert Örtel Berlin - 1937
17— Der Schnee Des Lichtes. Berfa Ronahiyê Şihrên Kurdî Prinz. K. A. Bedir-Xan û Dr. Curt Wunderlich Berlin - 1937

**Kiriya Hawarê 500 Qirûşên Sûrî**

---

**Xwedî û gerînendeyê berpirsiyar: Mîr Celadet Alî Bedir-Xan. Şam—Sûriye**
**Directeur Propriétaire : Emir Djéladet Aali Bedir-Khan. Damas—Syrie**

SAL 10
HEJMAR 44
ÇARŞEMB
20 GULAN 1942

ANNEE 10
NUMERO 44
MERCREDI
20 MAI 1942

# HAWAR

## KOVARA KURDÎ ★ REVUE KURDE

TÊXISTIYÊN VÊ HEJMARÊ



ŞAM—1942
ÇAPXANA SEBATÊ

SAL 10
HEJMAR 44
ÇARŞEMB
20 GULAN 1942

# HAWAR

ANNEE 10
NUMERO 44
MERCREDI
20 MAI 1942

KOVARA KURDÎ ✶ REVUE KURDE

## TEFSÎRA QURANÊ

92 — Heta ko hon ji malên xwe ên hêja di riya Xwdê de ne din, hon nagehin xeyr û qenciyê. Yezdan her qenciya ko hon dikin dizane.

93 — Ji lawên Israîl re, her zad helal bû, bes berî dahatina Tewratê, wan xwarina hin liştan-seba nezrekê-ji xwe re heram kiri bûn; weke şir û goştê devê.

Piştre cuhî rabûn û gotin herambûna wan di Tewratê de nivisandiye. Bêje wan: Heke hon dilpak û rastiyar in, ka Tewratê bînin û bixwînin.

94 — Heçî pişlî vî, gotina vir li ser Xwedê dikin,ew ezabdarên nefsa xwe ne.

95 — Pêxemberê min.... bêje wan: Xuda rast got, Yezdan rastiyê dibêje, bi gotina wî qaîl bibin, bikevin pey miletê Ibrahîm. Ibrahîm li ser rastiyê sekiniye û ji bêdînan ne bûye.

96 — Mala pêşin ko ji bo bawermendan hate ava kirin, Mala Xuda ye;di Mekê de. Qedrê wê giran e û ew ji erd û ezmanan re şani riya rastiyê dide.

97 — Di Mala Xuda de, delilên mezinahiya wê ên aşikare hene, weke Meqamê Ibrahîm û ji wî pê ve her kesê ko dikeve hundirê wî, ji talan û kuştinê ewle dibe û Yezdan ji her kesî re ko taqeta wî heye, qesda ziyareta Hecê emir û ferman kiriye. Yên ko emrên Xuda davêjin pişt guhên xwe bila bizanin...... Xwedê ne hewcedarê taet û ibadeta wan e. Yezdan, mezin û dewlemend e.

98 — Bêje wan: Gelî xudankitêbino..... Çima hon ayetên Xuda li ser Hecê inkar dikin, Xwedê emelên we dizane.

99 — Bêje wan... Gelî xudankitêbino.... Ma çire hon dest bi vegerandina mirovên bawermend ji riya Xwedê a rast dikin, Hon bi xwe dizanin ko dinê heq, dinê islam e. Xuda ji emelên we ne bê hay e, ew pê dizane.

100 — Gelî bawermendino.... Heke we, bindestiya mirovên xudankitêb kir, divê bizanin,piştî ko hon misilman bûne ewê we ji nû ve, ji dînê islamiyetê dertêxin û vedigerînin kafirîtiyê.

101 — Ma hon çawan kafir dibin? Ji we re Quran tê xwendin û pêxemberê Xwedê di nav we de ye û ji we re şiretan dike. Yên ko li gora emir û fermanên Xuda dimeşin û xwe dispêrin Xwedê,bila bizanin, Yezdan wan digihîne riya rastiyê.

102 — Gelî bawermendino.... Emir û fermanên Xuda her binin bîra xwe, ji dil ji Xuda bitirsin, berî nîzîkbûna mirinê bibin misilman û misilman bimirin.

103 — Bi dilekî xurt bikevin ser riya Xwedê û bi ya Quranê bikin, dev jê bernedin û destê hev bigirin, gotina xwe bi yek bikin, û kerema Yezdan bînin bîra xwe, hon dijminên hev bûn, wî dilê we li hev anî û bi kerema wî hon bûne brayên hev, hon di ber lêva kortalekê têragir de bûn; wî hon jê xelas kirin. Xuda bi vî awayî ayet û delilên xwe şani we dide, ta ko hon li gora wan bimeşin û bimînin ser riya rastiyê.

104 — Divê ji we, miletek rabe ko ji xelkê re li gora şerîetê bi cihanîna

qenciyê û bi ne kirina xirabiyê emir dike. Miletên wisa bextxweş in û digehin rastiyê.

105 —Mebin, weke wan mirovên ko piştî hatina ayetên Xwedê dîsa gotina xwe nakin yek, li hev dikevin, qayîş û berberiya hev dikin. Ji wan re ezabekî mezin heye.

106 — Di roja piştdawiyê de, rûyên hinan gewr û rûyên hinan bibe reş û ji yên rûreş re dê bê gotin: we baweriya xwe anî û hon jê paşê kafir bûne, ji ber vî yekî niho jî herin tama dojehê biceribînin.

107 — Lê yên rûgewr, dikevin bihuştê û ew tê de her dimînin.

108 — Ev ayet û hikmên Xuda ne, ji te re rast tên xwendin; Xuda naxwaze ehlê erd û ezmanan biêşîne.

109 — Her tiştên erd û ezmanan milkê wî ne û her tişt vedigere ba Xwedê.

110 — Miletê çêtir hon in; hon ji xelkê re li gora şerîetê bi cihanîna qenciyê û bi nekirina xerabiyê emir dikin û baweriya xwe bi Xwedê tînin. Heke xelkên xudankitêb jî baweriya xwe bianiyana, ji wan re qenc dibû, (rast e ko) ji wan hin mirovên bawermend hene, lê bêtirên di wan fasiq in.

111 — Zererê wan nagihe we; ew, we bes aciz dikin, heke wan bi we re dest bi şerî kir, dê bêne şkênandin û wê baz bidin û nisret nakeve destê wan û ew nagehin felatê.

112 — Ew li kû derê jî bibin ewê bikevin perîşanî û şermisariyê, meger ko misilman dibin an dikevin bextê misilmanan. Herwekî wan ji rastiyê xwe dane paş, erna Yezdên giha wan, ew dê şerpeze û belengaz bibin.

Ji ber ko wan ayetên Yezdan inkar kirin û pêxemberên Xuda bê rê kuştin, ji ber ko wan gunehkarî dikirin û îşin dikirin ko ji serê wan zêde bû.

113 — Xudankitêb hemî ne weke hev in; ji wan miletek heye ko li ser baweriya xwe sekiniye, di şevê de ayatên Xuda dixwînin û secde ji Yezdan re dibin.

114 — Wan baweriya xwe bi roja piştdawiyê aniye; ew li gora şerîetê bi cihanîna qenciyê û bi nekirina xirabiyê emir dikin û di kirina qenciyê de bi lez û bez in û ew ji mirovên salih in.

115 — Yên ko qenciyê dikin, divê bizanin ko qenciya wan tu caran naye ji bîr kirin. Xuda ji wan re bi zêdahî qenciyê dide. Yezdan emelên evdên xwe ên qenc û dilpak dibîne û dizane, Xuda qedirdan e.

116 — Mal û zar û zîçên kafiran, tu caran nikarin li ber Xwedê arikariya wan bikin. Ew dojehketî ne û tê de her dimînin.

117 — Di dinyayê de comerdiya wan kafiran mîna zeviya gunehkaran e ko bayekî sar û cemidî lê dide û zadê wê zeviyê dişewitîne. Xwedê ew ne êşandine, ew bi destê xwe mala xwe xira dikin.

# HEDÎSÊN

## CENABÊ PÊXEMBER

### REHMET Û SILAVA XWEDÊ LÊ BE

623 — Yê ko be heq û rê xelkê diêşînin para wan dojeh e.

624 — Yê ko misilmanekî pak e dibe xerabî jê çêbibe lê li kesî derew û bêbextiya na ke.

625 — Yê ko talanê xelkê tîne, heqê xelkê dixwe cihê wî dojeh e.

626 — Her kes di dilê wî çi hebe wê kifş bike: qencîker bi qenciya xwe, derewîn bi derewê xwe, bêbext bi rûreşiya xwe, mêr bi mêraniya xwe, camêr bi camêriya xwe tê ne nas kirin.

627 — Mal û xwîn û namûsa we li hev heram e.

628 — Derewa mekin, dawiya derewê tu ne ye, hon pê dinya û axireta xwe bi zmanê xwe xera dikin, lê di sê tişta de derew ne kêmanî ye, yek di şer de ji ber ko şer tep û hîle ye, a didiwa; ji bona dilxweşkirina jina xwe, heta ko dilê wê ji mala wê ne reş be, a sisiya; ji bona li hev hatina mirova ji ber ko bi hev ketina mirova xerabî

û fesadî jê çêdibe, ko agir bi erdê ket gerek wî agirî mirov vemirîne, avkê li wî agirî bike; ne ko mirov agir xweş û gûr bike.

629 — Li xirabiya xelkê me gerin, ew ji bona we xeyreke mezin e.

630 — Poşmanî ji niv tobak e, heke we guneh ne kirana Xwedê mileteki dî xulq bikira heta ko gunehkar bibin û Xwedê di gunehên wan bibore.

631 — Yê ko çavê wî tim li neyarti û xerabiyê ye xeyra kesî na xwaze gunehkar dibe û ew guneha ko Xwedê li ser stoyê wî daniye besi wî ye.

642 — Heke tu her tiştê ko bi guhê xwe dibihîsî û bi çavê xwe na binî dibêji dawî tu derewîn derdikevî.

643 — Heke tu dibêjî ez heqê xwe temam distînim û tişteki xwe yê zêde bi ser wan de bernadim wê gavê mirov dizane ko tu çavteng û temakar î

634 — Tirsa Xwedê elametê zaninê ye û ji xwe razî bûn û pozbilindî ji destê nezaniya me ye.

635 — Bi nav û dengê pêşiyên xwe, xwe mezin me kin, mezinahî bi camêrî û emelê qenc, bi zanîn û marifet e.

636 — Heke hon eqilmend in li pêş xwe li dinyayê binêrin û jê ibretê bigirin.

637 — Di sûçên deyndarên xwe biborin ta ko Xwedê jî di gunehên we bibihore.

638 — Xwedê di gunehên mirovên ko li ser riya heq û rastiyê hatine kuştin dibihore

639 — Tiştên rast û hêja ko hon pê dizanin binivîsînin, ta ko ew tişt winda ne bin, û xelkê dawî jê aqildar bûn.

640 — Îşê xwe bi asas deyne paşî bispêre Xwedê.

641 — Bêjin : Xudayê me efiwa te ji gunehê me mezintir e, em bevîkarê comerdiya te ne.

642 — Bêje : min baweriya bi Xwedê anî û bide ser riya rastiyê.

643 — Yê ko dilpak e xwediyê gotina xwe ye.

644 — Heçî dara ko xelk li bin siha wê radikevin û vedizelin dibirin, Xwedê wan bi ser rûyê wan davêje dojehê.

645 — Qeda û heft bela li mala cuhiya bikeve yên ko tirba pêxemberên xwe kirine mizgefta xwe.

646 — Ji nîmeta ko bi xweydana eniya xwe û keda piyê xwe na keve destê we bijerin, devberdana wê ji mineta xelkê çêtir e.

# REŞBELEK

## JI CEMŞÎD Û SÎNEMXANÊ RE LI BÊRÛTÊ, MÊVANÊN MAMÊ XWE.

Zarono !

Ev bûne deh panzdeh roj we terka mala bavê xwe da û hon çûne Bêrûtê; nik mamê xwe.

Bawer bikin êdî wext e ko em li ser vê çûyînê hinek xeber bidin. Bivê nevê hon ji honê bixwazin bizanin di pey we re û bêi we bergehê mala bawê we çawan dixuye û di pergara mala we de çi hatiye guhertin û ev çawan guhêriye û bi vê guhartinê gelo em razi ne, an em bêriya wextê berê, wextê ko hon li mal bûn, dikin.

Hon bi xwe ji dizanin ko îşê we zehmet e, teşxele ye, teşxeleke mezin e.

Belê, piştî çûna we mala me dimîne qadeke şer ko dengê top û tifingan lê sekinîne. Lê herçî li wê qadê mane gumêna top û tifing û mitralyozan hêj di guhên wan de ye. Roj bi roj ew gumên jî winda dibin. Lê ji ber ko ew, ên bişûndemayî, hinî bêdengiyê ne bûne, ji xwe dipirsin: ma çi li me qenimiye; ev çi bêdengî ye. Qey guhên wan ji bêdengiyê diwestin. Qey ji vê rahetiyê aciz in û li nerahetiyê digerin.

Îro, xaniyê me ji berê papijtir e. Kes

---

647 — Qencî xwediyê xwe ji tengayiyê derdixe.

648 — Li ba min qedrê zanînê ji xeyra ibadetê çêtir e.

649 — Paşgotiniya heval û ciranê xwe me kin, ew tişteki xerab û pir guneh e.

650 — Jinikeke xerab seyeki bê av dît, av kişand û ber ra ber wî da, Xwedê di gunehên wê pirekê hemî borî.

651 — Pez xeyr û bereket e. Xwediyê devê xelayê na bîne, heta roja piştdawiyê eniyê bespa bi xeyr û oxir e, xulam û xadimê we hevalê we ne, hergavê dilê wan bi danekê şa bikin, û gava ew dikevin tengiyê wan di wê tengasiyê de me hêlin.

652 — Ez ji tercalî bêtir ji wan dîndar û misilmanan ditirsim yên ko gotinek bi rastî ji xelkê re na bêjin, ji bona kar û menfeeta xwe xelkê xeşîm û nezan dihêlin û wan didin ser riya xwar.

653 — Mirovê ko tiştên li ser riya ko xelk jê aciziya dikin ji rê hiltîne digihe kerema Xwedê û Xwedê di gunehên wî dibore.

nîne ko kaxezan biçirine û wan li ser mehfûran bireşîne Mehfûr bi xwe jî kêmtoz in. Herçî firax ew jî weke berê naşkên Heke yek bişkê jî, bêdeng e, ji ber ko wê diya we dişkênine. Ji xwe divêt hon bizanin ko dizika kebaniyê şkênendî bêdeng e

Gava hon li mal bûn; min nikarî bû ez bixebitim. Ji ber ko we ne dihişt Diviya bû ez bidim pey we û li we miqate bibim, nehilim ko hon nizingî li sobê bikin, biçin ber avê û nehilim ko hon hikevin û bîêşin.

Min dikir ne dikir, carina hon bêî min diketin, we xwe birîn dikir; hon digirîn, min ji we re digot: Xwedê ji we rezî ne tu xem e ko hon ketine; serê we jî bişkê ne xema min e, seriyê he deq û şeq ji xwe kundir e; lê megirîn, ez ne li her êş, lê li ber giriyê we dikevim, ez jê aciz im. Girî ne karê mêran e. Ji lewre û nemaze ji bona Cemşîd qet çênabit. Mêrên kenc nagirin; lê ew dijninên xwe digirînin.

Lê bêfêde; min digot... digot... lê hon dîsa diketin û digirîn..... Guhên me hînî giriyê we jî bû hûn. Carina hilqetilqa kelo-giriyê we jî dibû; wek defeke nekokirî.

Digel vê hindê divêt ez mikur bêm ko di van ketinan de par û sûcê min an par û sûcê piriyê jî divêt behe. Ji ber ko gava berçavik bi çavên min ve ne ez we gah dibînim, gah nabînim. Belê ev berçavik ji, berçavikên piriyê, tevayine ecêb in. Gava tu wan bi guhên xwe ve dikî, yanî perdeke cam di pêş çavên xwe re dikişînî ji nizingî xweş dibînî; lê ji dûr ve nabînî. Û heke te ew ji ber çavên xwe danîne heta dawiya dinyayê dibînî; lê ber pozê xwe, bişkojên kirasê xwe nabînî. Ev jî yek ji hezar halên piriyê ên, ne tu. Pêşiyan bila sebeb ne gotiye pîrî hezareybî.

Belê, gava we niyeta seferê kir, min jî niyeta xebatê kir û di dilê xwe de got: Heke zaro çûn ezê bikarim qenc bixebitim. Min ji xwe re projeyine mezin çêkiri bûn.

Min digot ezê di vê navê de giramêra xwe û Kitêba Sînemxanê biqedinîm û hinde nivîsaran bivivîsînin ko têra çend hejmarên Hewarê bikin.

Lê welê ne bû. Min kotek Hawara ko di bin çapê de ye qedand û ji bo Hawara tê min xêzek jî ne nivîsand.

Ma gelo çire ? Ez ji kû zanim. Gava hon li hir bûn ez ji reprepa we aciz dibûm; min nikarî bû ez bixebitim. Lê niho, mal xir û xalî, ne deng e, ne pejin; mêşek bifire em pê dihesin. Bawer bikin ez niho ji têrahetiyê aciz im; ji lewre ez nikarim bixebitim.

Gava hon li mal bûn, bi min be, ez çêtir dixebetim. Ez bi şefeqê ve radibûm û heta ko hon hişyar dibûn saetkê an du saetan ez bi nivîsandinê mijûl dibûm.

Berî ewilî Cemşîd hişyar dibû Qey camêr ji xewê bêtir bi kêrî hişyariyê dihat. Ez dienirîm. Lê heta hingê min qederê deh rûpel nivîsandi bûn.

Lê niho ez dereng radibim. Ez ji xwe re dibêjim, ma çire ez zû hişyar bibim; çi li min qewimiye, zaro ne li mal in; kes nîne min aciz bike; ez dikarim bi kêfa xwe bixebitim.

Carina, bi şev dengê we dikim û hişyar dibim; çavên xwe li texlên we digerînim. Paşê, tête bîra min, ez dibêjim sehwir e, ma zaro ne çûne Bêrûtê.

Berê min diya we hişyar dikir; niho diya we min hişyar dike.

Berê ez dereng diçûm çapxanê; lê zû vedigeriyam mal. Niho zû diçim, lê dereng vedigerim. Paşnîvro, ji rojên dibistanê pê ve, hesêb, tucaran ez dernediketim derve. Lê niho piştî nîvro jî ji xwe re îşekî peyda dikim û diçim bajêr. Li min dibe şev û paşê ez vedigerim mal û ez nikarim bixebitim. Ma hon çi dibêjin, heke hon vegeriyan mal ezê bikarim bixebitim. An Îfonê min dîsan aciz bikin.

Zarono herwekî min ji we re got di mala me de rahetî û hêsahîke ecêb heye. Lê gelo kêfa me ewçend jê re têt.

Maleke bêdeng, bawar bikin, wek jiyîneke bê saz û stran e.

Ma guh ne ji bona bihîstinê ne. Divêt mirov bibihîse û deng bi guhê mirov' bikeve. Lê ji roja ko hon çûne deng û gazî di mala me de daneketine.

Belê zarone ! mala me îro dimîne wê kunpereya ko zêrên wê jê ketine, tu çiqasî wê bihejînî jî deng jê nayê.

Şam : 12 Nîsan 1942. BAVÊ CEMŞÎD

# XATÛN AN PILING

## JI FRANK STOCKTEN

Di wextekê de padişahek hebû. Fikirên vî padişahî ne wek fikirên ên din bûn. Fikirine wî en ecêh hebûn. Di wexta wî de padişahan ji bo şahiya xelkê xwe, di cejin û dawetan de peya û dehbe berdidan hev.

Lê vî padişahî ji vê adetê re tiştekî nû zêde kiri bû. Di van temaşan de ne bi tenê xelkê kêf dikir; lê peyayên qenc xelat û ên xerab dihatin ceza kirin. Gava mirovek bi xerabiyê dihate itham kirin ew tavêtin hepsê û piştre ew tanin meydana temaşê. Wexta meydan ji temaşageran tijî dibû û padişah li ser textê xwe rûdinişt temaşa dest pê dikir.

Di dawiya meydanê de, li cem hev du deriyên wekhev hebûn. Girtî di meydanê re derbes didû û diçû û derîk ji wan deriyan vedikir.

Eger girtî deriyê sûcan vekira, jê pilingekî birçî derdiket, xwe tavêt ser wî û ew dikir perçe perçe. Hingê xuya dikir, yan pedişah welê bawar dikir ko mêrik bisûc e û bela xwe ditiye

Lê ko mêrik deriyê din vedikir, jê xatuneke delal û ciwan derdiket û padişah ew xatûn ji mêrik re mehir dikir û xelkê ji şahiyê ji wan re li çepikan li hev dixist. Mêrik bi jin ji biwa padişah jê re ew jinik jî dida. Ji ber ko bi vekirina vî deriyî mêrik şanî dida ko bêsûc e û zilamekî qenc e.

Li cem qiralan ev isûl pir, bêja bû. Ji ber ko bi carekê de peyayên xerab bela xwe û peyayên qenc mikafata xwe digirtin.

Xelkê jî hejî vê tewaşiyê dikir; temaşake bimeraq. Xelk gava dihatin temaşagahê û hetanî ko girtî deriyek vedikir, wan ne dizanî gelo ewê dawetekê an kuştarekê bibînin. Piling carina ji vî deriyî û cerina ji ji wî deriyî derdiket.

*
* *

Keçikeke padişah e delal hebû û li ber dilê wî gelek eziz bû. Wê keçikê, dizîka, ji peyayên serayê hejî xortekî mêr û çeleng dikir. Lê ji ber ko ew xort ne ji mirekan bû hejkirina wî sûcekî mezin bû. Ji lewra gava padişah bi evîna wan hesiya ew xortê delal avête hepsê. Li gora isûlê wî ev xort jî wê biçîwa û di temaşagahê de deriyek wê vekira. Bi vî awayî wê bihata zanîn hejkirina keça padişeh lê dibû sûc an ne. Herkesî û padişah jî dizanî ko ev tişt lê sûc e. Lê adet û rêzik diviya bû bihata cî. Ji ber ko sûc mezin bû di welêt de li pilingê xurtir û li xatûna çêlengtir gariyan.

Roja hikim hat. Xelk bi tofan diçûn temaşagahê. Cih hemî tijî bû bûn. Herkesî xwe ker kiri bû. Ewçend ko teptepa dilê xelkê wê bihata bihîstin. Işaret hate dayin û xort kete meydanê. Çiqas bibejin û rift û zirav, çiqas mêr û spehî dixuya. Li xwe ziviri û serê xwe li padişê nizim kir. Lê, lê ne nêri çavên wî diçûn dotmira ko li cem bavê xwe rûniştî bû.

Dotmir ne xwesti bû li mal bimîne. Hati bû ko qeder û sernivîsa dilgirtiyê xwe bibîne. Ji roja ko evîna wan bû bû eşkere dotmirê ji evîna wî pê ve her tişti ji bîr kiri bû, nibo wê çi bikira? Tiştek kiri bû ko heta wê wextê ji destê tu kesî derneketi bû. Ewê sira deriyan derêxisti bû. Belê ewê dizanî kîjan derî keçik û kîjan deri piling vedişêre.

Dotmirê ne bi tenê deriyê keçikê lê keçik bi xwe jî nas dikir. Keçika li paş yekî ji her du deriyan veşartî ji xatûnên qesirê a xweşiktir bû. Dotmir ew xweş dinasî. Ewê çend caran bi çavên xwe dîtî bû ko keçika li paşderî bi çavên evînê li dilgirtiyê wê nêrî bû û carekê du caran ji dotmirê bawer kiri bû ko dilgirtiyê wê jî li nêrînên wê keçikê vegerandi bû. Û dawiyê, rojekê dotmirê ew dîtî bûn ko bi hev re daxaftin. Vê keçikê wêrî bû li dilgirtiyê dotmirê binêre û pê re baxêve. Ji lewre dotmir lê hati bû xezebê.... xezebeke gur û kûr....

Gava xort serê xwe ji padişah re xwar kir û li dotmirê nêrî bû; çavên wî jê dipirsin: kîjan? Xort domtir xweş nas dikir, qudreta wê dizanî; bêşik dotmirê sira deriyan derêxistiye. Ji lewre xort li dotmirê gelek bi hêvî nêrî. Çavên wî jê pirsi bûn û xort zanî bû ko pirsiyariya wî jê re eşkere bûye. Diviya bû lê vegerine.

Dotmir piçik destê xwe rakir û ew her bi aliyê rastê bada. Ji dilgirtiyê wê pê ve tu kesî ew ne dît. Ji ber ko her kesî çavê xwe berda bû xort û awirên wan ber bi deriyan diçûn. Xort ne sekinî, bi mêranî û bi gavine lez ber bi deriyan çû. Dilên temaşageran qey sekinî bûn, herkesî bihna xwe girtî bû. Xort ber bi deriyê milê rastê ve çû û deriyê rastê vekir.

*
* *

Niho, tîjika çîrokê ev e. Gelo ji deriyê ko hate vekirin piling an jinikek derket? Herçend em vê meselê didin eqilê xwe

# DÎWANA MELÊ

— 23 —

Şimşadi xeram serwi ẍen-nac
Canan dibirit bi işwe tarac
Min dî seherê di xabi mestî
Da rengê tezer û lale der-rac
Bişkift ji ẍunce nêrgiza mest
Bû ferq li ser qedê ve tarac
Cebhet kesifî ji sibhi sadiq
Nûrê ko veda bi şibhetî dac
Elmas nimane şibhi misrê
Danîn cegerê me dil kir amac
Nesrîn û benefşe tew-wizandin
Mawerd reşande şûşeyî ac
Cihtê hebeşan bi tirfetileyn
Anî qedcrek ji Isfehan bac
Sima ko nima ne ma li hiş sim
Sîmab ji xecle ma ji ixrac
Mîrata Sikenderî li pêş e
Behrûn we leha ikusi emwac [*]
Dora qemerê ji ber şefeq da
Ko spêde li ferq ser niha tac
Çerx û felek û melek diborin
Ev Şems û kewakib û di ebrac
Zihre bi qirani qabi kewseyn
Welnecmi iza hewa bi midrac [**]
Dengê melekan dibête zimzim
Erwah ji eşqê têne mirac
Dil behrek e sed hezar mewc in
Arif çi xeber ji behri mew-wac
Borî û bi ẍencetê Mela kuşt
Ew xenceleba delal û ẍen-nac.

— 24 —

Dil ji ilacê ko bi der ket mizac
Dê ji lebê nûşî eta bit ilac
Ayînei cami cihan bîn cem
Badel lal ne di cama zicac
Avi heyatê bi we da şerbetek
Zinde kirim ma ji ediw re nişac
Bend kirim gerçi şibhi fîl bûm
Sîmberê saîd û bazû ji ac
Exteri iqbal û mehê birc û bext
Mihr û sipehr û kemer û text û tac
Kos ko hingaft bi şayî li text
Padişahan neqdi rewan da xerac
Xusrew û Şîrîn li der bendi hisin
Sîmberan lazim e lê mihr û bac
Sik-keyî şihra me bi navê te hat
Lew bi eyarê di cihan da rewae
Abi rewan min diye şihra Mela
Yinkir il maî li sûi-l-mizac [***]

— 25 —

Dîsa ji nû bêhal e dil saqî werîn cama zicac
Miştaqi xemra al e dil lew xweş bi rokê bit mizac
Saqî ko dê mehweş bitin kakul ji şêva reş bitin
Qerqef bila ateş bitin em dê bi wê dil kin ilac
Da em bi wê dil bey bikin sîne daẍ û key bikin
Sed menzilan pê tey bikin ew dê di sêrê kit rewac
Bê nûr û narê mihbetê bêneqş û sinbê qudretê
Naçin meqamê wisletê nûrin lena wel-leylû dac
Ev nar seyqeli dil e, daîm li wê qala dile
Newrûz û sersala dil e, weqtê ko hilbit ew sirac
Heta bi nûra badeyê rengîn nekî sec-cadeyê
Dûri jî wî şehzadeyî dirdaneya gerden ji ac
Dirdaneya gerden bilor rîhan li ser dêm bûne hûr
Hey hey bi mesti tête dor xala li nik ferqa bi tac
Mihra te pir ebter kirim, xalan ji biskan tu derîn
Zilfa miselsel enberîn, çîn çin ji çînê têne bac
Heryek li ser çebvan didin j' Ispehanê tên xerac
Çebvên belek qewsên belek çerx û felek ẍalib melek
Fî bib-biha emrî delek welhib-bî yecrî fî ecac [****]
Şahid b'hezar reng xem-milîn reqs û semayê [kem-milîn
Îro Mela em sed dil în, saqî werîn cama zicac.

---

(*) بحر وطا المكوس أمواج
(**) والنجم اذا هوى بمدراج
(***) ينكر الماء لسوء المزاج
(****) في حبها عمري دلك والحب يجري في عجاج

---

çend cihaba wê çetintir dibe. Ji ber ko dotmîr pir hejî wî peyayî dikir û bi hêsanî ji yeke din re terka wî ne dida. Carina di xewnên xwe de didît ko dilgirtiyê wê derî vedikir û pilengekî birçî xortê wê didirand. Carina jî xewinine din dîtin: didît ko derî vedibû û keçikek jê derdiket û bi dîtina keçika ciwan xort şa û dilxweş dibû û xelkê ji wan re çepilk li hev dixistin û ji kêfê didan ber qîran. Dîsan dotmîrê diti bû ko wî xortî ew xatûna çeleng wek jina xwe biri bû mal û qet li evîna wê ne pirsî bû. Ma bi carekê mirin jê re ne çêtir bû?

Bi saetên dirêj ve, bi şev û bi roj dotmîr dama bû. Ewê çi bikira? Ewê dizanî ko xort deriyê xêrê jê bipirsiya. Dawiyê dotmîr qerara xwe da bû û gava xort jê pirsî bi lez destê xwe rakiri bû û deriyê aliyê rastê şanî wî da bû.

Gelo dotmîrê kijan derî bijarti bû? Ez bi xwe nikarim li vê pirsiyariyê vegerînim. Ji lewre ez wê ji we hemiyan re dibêlim: Ji deriyê ko hate vekirin çi derket, piling yan xatûn. NÛREDÎN ÛSIF

# KUMANDOS

Xêra medeniyetê, medeniyeta sedsala bîstan, wek her tiştên dinyayê şer, aletên şer, awayên şer û her tiştên şer geleki guhêrîne û bînbûna wan bûne tiştine zehmet, fenine zirav û dişwar. Di vê navê de emê îro behsa kumandos bikin.

Kumandos çi ye? Kumandos bi gotina me nijdevan an çeteçi ne. Lê ew ne wek çeteçiyên me bi tenê dizanin tifingê bişixulînin. Ew mirovine xwendî û medenî ne û bi gelek tiştan dizanin.

Kumandos gotineke portekîzi ye. Gava ingilîzan di nîvroyê Efrîqayê de şerê boêran dikir, boêran çeteyine kumankos teşkîl kiri bûn û bi wan şerê ingilîzan dikirin. Di vî şerî de piştî ko ingilîz ji Donkerkê kişiyan û lingê wan ji erdê Ewropayê qut bû ev kumandos saz kirine. Peyayên kumandos fedayî ne. Talîmeke xweser dibînin. Divêt ew segmanine baş bibin û bi melevaniyê bizanin. Ji milê din kumandos divêt xweş bizanin xerîtê bixwînin û li gora plan û xerîtan bi rê ve biçin û tiştên ko plan şanî didin di tariya şevê de jî bikarin li ser wan vebin. Ne hewce ye ko em bibêjin madam ew şerevanî ne berî her tiştî divêt ew mêrine qenc bibin. Ji ber ko heke ne mêrine qenc in dema ko tifing teqiya ji tirsan ilm û fen û her tiştî ji bîr dikin û hema çavê xwe didin revê.

Yekî ji wan kumandosan biserhatiyeke xwe ji rojnawenanekî ingilîzî re bi awayê jêrin qise kiriye û gotiye:

Vê carê meê dirêjî Berdiyayê bikira. Berdiye di peravên Lîbyayê de bendereke kiçik e. Dijmin di vê benderê re çek û zad dibirin Kepûço û deverine din; yên ko ji behirê dûr bûn.

Li gora talîmata ko da bûne me diviya bû em seh bikin: Eskerên dijmin di nav bajêr de diminin an konên xwe di dora bajêr de vedigirin? Eskerên Berdiyê talyan an eleman in? Berdiye bi rastî ehemiyata ko didin-ê lê heye; yanî di wê benderê re ji dijmin re gelek tişt tên?

Ji milê din û li gora talîmata ko me ji fermandariyê girtî bû diviya bû em hemla xwe welê bikin ko dijmin bawer bike ko ev hicûmeke mezin e û mecbûr bibe ji deverine din esker bîne. Bi vî awayî me barê hin eskerên xwe sivik bikira. Rê bi me biketa meê pir, depo ê her texlît avahiyên neyar xerab bikiran.

Li me bû şev, em li vaporeke piçûk lê bilez siwar bûn û bi rê ketin. Diviya bû em saet yanzdehan de bigihaştana armanca xwe û di saet didowan de jê vegeriyana. Bi vî hisabî ji bo qedendina îşê xwe me sê saet wext hebû. Heke me û dijmin li hev ne xista ev wext têr dikir.

Berdiye li ser zinarekî ye. Di vî zinarî û di peravê de çar qelş hene ko mirov dikare li wan peya bibe. Li van qelşan çar mifrize wê peya bibiwan. Gava em li vaporê siwar bû bûn her mifrize yeko yeko wezîfa xwe nas kiri bû.

Bi rê ve. berçî serekên mifrizan, xerîte û fitograf bi dest, peyayên xwe da bûn dora xwe û wezîfa her kesî jê re digel her hûrabiyê didan zanîn. Ji van mifrizan şeş peya bijartin; ewê di vaporê de bimana. Mifrizeyek jî li paş me bimaya ko keke lihevxistin çêbû ewê riya piştmêrên dijmin bibira.

Her tevdîr û talîmat xelas bû bû û em bêj ji armanca xwe dûr bûn. Diviya bû em hinekî rakevin û bihna xwe bidin. Lê em ewçend di beyecanê de bûn ko xewa me ne dihat. Em ji hev belav bûn û heryek bi tiştekî din mijûl dibû. Piraniyê çekên xwe paqij dikirin. Hinekan solên xwe ên spî yên fotbolê reş dikir. Hinên din bombeyên destan li ber piştên xwe dikirin h. d....

Dinya hinek sar bû bû û behir xwe têk dida. Em tirsiyan ko firtineyek derkeve û bêî ko em bi karê xwe rabin em vegarin wargehê xwe.

Bi adetî şevên Behira-spî ne ewçend reş in. Lê îşev tarîke ecêb li me daketi bû. Me kotek ezman didît.

Dawiyê em gihaştin. Filûqe daxistin behirê û em li wan siwar hûn. Ecêb, peyayên ko di vaporê de nikari bûn binivin, niho di filûqê de di xew re çû bûn. Ji nişkekevê ji binê filûqê xişiniyek hate bihîstin. Me nîzingî li bejê kiri bû û filûqe li qûmê rûnişti bû. Em dakatin avê û jê gihaştin qelşikên zinarê Berdiyê. Herkesî da bû pey serekê xwe û bi lez ber bi armancê ve diçû.

Piştî midekî min dît ko li pêş tiştekî neadetî heye. Min xwe da pêş û ez gihaştim sefa pêşîn. Peya li ber çalekê şekinî bûn û dikirin di ser wê re xwe zer bikin. Çal ji nîvî bêtir ji avê tijî bû. Talîke tangan bû. Di fitigrafên ko balafirvanên me girtî bûn ev çal xuya ne dibû. Ji lewre me ji berê de tevdîra wê ne dîtî bû. Em li çalê derbes bûn. Lê me pê bîst deqîqe winda kirin. Em hildikişiyan

serê tebt û zinaran. Lê ne gelek bi zehmet. Ji ber ko em li wan li ser xerite û fîtografan hûr bû bûn. Em ketin newalekê; newalek mîna bêrmekê, biniya wê teht. Me lingên xwe kiri bû nav kulavan, da ko dijmin pêjina lingên m nekit Lê ji ber ko em di newalê de bûn rexma her tiştî carina deng û berdengîn dihatin bihîstin

Ji nişkekê ve û pey hev sê derb hatine berdan û berik di ser serê me re borîn. Peyayên mifrizê di cih de sekinîn û li xwe xebitîn. Lê dîsan bi rê ketin; qesta pêş kirin. Min di dilê xwe de digot gava em daketin bejê dijmin bi me hesiya bû lê deng ne kiri bû û hişti bû ko em ji behrê bi dûr bikevin. Û gava em ketin newalê bi ser me de girtin. Lê ne were bû. Piştî wan her sê derban dîsan bêdengiyê dora me girt.

Me da bû kumbireki û me dikir em lê hilkişin. Bû bû hilqehilqa dil û singên me. Me lez dida xwe; ji ber ko em dereng ma bûn û wext li me dibori. Saet hû bû yek kêm çarîk. Diviya bû saet dido û kêm çarîk de em vegeriyana peravê û li saet didswan bigihaştana vapora xwe. Ji xêra Xudê re mifrizeyên din yên ko di riyên din ve çû bûn gihaşti bûn bajêr û dest bi işê xwe kiri bûn.

Bajar vala bû. Di Meydanekê de gornistaneke timobîlan hebû; timobîline şikestî û şewitî. Kumandosên ko beriya me gihaşti bûn bajêr dînamît datanîn depoxaneyan. Herçî pir me dînamît bi wan ji xisti bûn. Depoke kewçûk ji ket destê me em bi karê wê ji rabûn. Dijmin bi me ne dibesiya. Dînamîtên ko me dani bû depoxanan û lingên piran beriya ko em vegerin vaporê wê biteqiyan.

Ji nişkekê ve me dengê motoran kir. Du mitosîkl di ber me re borîn. Me agir kire ser wan lê me ne hingaft. Lê bi vi awayî dijmin bi me bihesiya û wê bigota ko qewetên ingilîzi daketine Berdiyê û bi ser me de tang û qewetine mêkanîkî rêkira. Ji xwe me ji ev diviya bû. Da ko dijmin mecbûr bibe û di qadekê de qeweta xwe kêm bike.

Me işê xwe qedand û berê xwe da peravê. Dînamît teqiyan; pir û depoxane herhewa bûn û agir bi avahiyan ket. Bi roniya şewatê me pêşiya xwe çêtir didit. Êdî dijmin bi me hesiya bû û topên xwe li me girêda bû. Lê tu zerer ne giha me û em gihaştin vapora xwe. Balafirên dijmin rabû bûn; di ser Berdiyê re difiriyan û li me digeriyan. Me peyayên xwe hejmartin; birekî mifrezê didowan hêj venegeriya bû. Saet bû bû dido, dijmin bi me hesiya bû, me nikarî bû em li hêviya wan bimînin. Vapor bi rê ket.

SILÊMANÊ FERHO

# REWŞA DINYAYÊ

**ŞERÊ BÎRMANYAYÊ** — Vê paşiyê şerê Bîrmanyayê germ bû bû, Japonan lez dida xwe û dixwest rojkê berî rojkê şerê Bîrmanyayê xelas bike. Ji ber ko di Gulanê de barana wî welati dest pê dike, erd dibe herî û hereketên eskerî lê disekinin.

Ji xwe radyowa Londrê ji digot ko di Bîrmanyayê de weziyet xedar û giran e. Hawara japonan her û her dihat. Japon gewî bû bûn û berdan ser çinî û ingilîzan. Ewan ji li ber vê zorê çend caran xwe daye paş û ketin çeperine nû û bi destpêka Gulanê ve bajarên Laşyo û Mendelay ji dest dane Ev her du bajar ji bajarine mezin û mihim in. Mendelay merkeza Bîrmanyayê ye. Herçî Laşyo li tixûbên Çînê û ji behire ve dawiya riya Bûrmayê ye û ji bire rê dikeve erdê Çînê.

Riya Bûrmayê herwekî xwendevanên me dizanin ji bo çîniyan gelek hi• ehemiyet bû. Çîn, Çîna Çenkeyşek bi tenê di wê rê re digihaşt behirê.

Ji Tîrmeha sala 1937an yanî ev pênc sal in japon şerê Çînê dikin. Japonan berî her tiştî peravên Çînê vegirtin û ew ji behirê qut kirin da ko jê re di riya hehirê re tu çek û cebirxane nayit. Lê Çenkeyşek di riya Bûrmayê û di erdê ingilîzan re û nemaze ji Emêrîkê ji xwe re her tişt tani. Ji milê din di bejê re û ji Rûsyê ji hin tişi ji Çenkeyşek re dihatin.

Japonan digot heke me zora Çînê ne biriye sebeb riya Bûrmayê ye û zor didan ingilîzan ko wê rê bigirin. Ingilîzan guh ne dida japonan. Lê piştî ko ingilîz di Ewropayê de û di şerê elemanan de bi tena xwe man ji bêgaviyê bi japonan re li hev hatin û riya Bûrmayê ji bo sê mehan girtin. Di vê navê de japonan bi destûra hikûmeta Vîşiyê esker anî Hindeçîniye. Inilîzan dît ko bi japonan re midare bê fêde ye, piştî sê mehan riya Bûrmayê ji çîniyan re vekir.

Ji roja ko japonan dirêji ingilîz û emêrîkaniyan kir Çîn bû hevalbendê wan. Ji hingê ve ingilîz û emêrîkani ne bi tenê di riya Bûrmayê re lê bi her awayî û di rêne din ve ji her tiştî dişînin çîniyan û çînî di sefên îngiligan de şerê japonan dikin.

Ji xwe Mister Rûzwelt gava japonan ev rê hiri da zanin ko hevalbendan li şûna vê riyê riyên din saz kirine û ji çiniyan re weke berê her texlit çek û posat dê bête şandin.

Japonan pişti ko ev her du bajar xistine destên xwe dikin bi manawrakê eskerên çini û ingilizî ji hev veqetînin. Di hin cihan de ji xwe ketine baskên wan û li wan têne wer.

Bêderew, japonan pişti ko Laşo vegirt derbasi erdê Çinê bû û qederkî tê de meşiya. Bi vî awayî çini û ingilizî ji hev qut bûn û japon ket navbera wan. Herçend ingiliz di newalekê de ma bin ji li gora danezanên ingilizi ev esker bi isûl û nizam xwe didin paş û dikin xwe bigehînin giraniya ordiwa Hindistanê.

Ji milê din japon berê xwe daye bakurê roavayê Birmanyayê û dike riya ko di Kelkotê re diçe Çinê, wê ji bibire û bi vî awayî Çina Çenkeyşek yekcar ji riyên behirê mehrûm bike. Li gora nûçeyên paşin çini pê li erdê didin û li ber êrişa japonan disekinin. Çinî bi xarekî berdane ser rêhesina Laşo-Mendelay û ev rêhisin birine. Li 15ê Gulanê radyowa Londrê digot ko şerê Birmanyayê divêt bête hesêb ko xelas bûye.

PIRSA MEDEGESKARÊ — Medegeskar girav û mistemlikeke frensizî ye Ev girav dikeve nivroroheIê Efriqayê. Medegeskar ji ber cihê xwe ê cexgrafî gelek bi eheiniyet e. Yê ko Medegeskar di destê wî de ye dikare riyên nivroyê Efriqayê û riya Behira-sor li neyaran bigire. Piştî ko japon derketine Behira hindî di dora Medegeskarê de gelek kurt û pist çêbûn. Digotin ko hikûmeta Vişiyê wargehên Medegeskarê wê bidit japonan; japon wê esker derînin Medegeskarê.

Herçî dewletên mihwerê ne ji bervajî ve digotin ko ingiliz û emêrîkaniyan dil heye ko Medegeskar bêxin destên xwe û ji lewre li hêncetan digerin. Ji milê din digotin ko heyeteke japoni gihaştiye Medegeskarê û digel memûrên giravê ên firensiz hevkariyê dikit.

Li 5ê Gulanê, serê sibehê radyowa Londrê ji dinyayê re dida zanin ko eskerên ingilizî gihaştine Medegeskarê û dikin dakevin bejê. Hikûmeta Londrê danezana jêrin belav dikir:

« Dewletên sondxwarî ji bona ko pêşî ji japonan bistînin û nehîlin ko japon esker derînin bendera Diêgo-Swarês, ji dihî ve qewetên ingilizî gihaştine pêşberê Medegeskarê. Emiralê stolê ji zimamderên giravê ên firensiz re da zanin ko sondxwarî ji her sebebên eskerî û bi miweqetî giravê dê vegirin; lê girav her firensiz e û her wê firensiz bimîne ».

Herçî Emêrîke ewê ji danezanek belav kir û tê de got ko işê Medegeskarê bi raya wê çêbûye û her du hikûmet, Ingiltre û Emêrîke di vê babetê de yek in û pişti şerî an roja ko ji vegertina wê re hewce ne ma, Medegeskar wê vegere Frensê. Ji milê din Emêrîkê digot heke hikûmeta Vişiyê dest bilanî û li ber xwe da emê vê hereketê jê re di heqê sondoxwariyan de dijminahî dê bihesibînin.

Emiralê stola ingilizî ji waliyê Medegeskarê teslîmkirina giravê xwest. Walî ev teklîf bi şûn da avêt û da zanin ko eskerên giravê wê dest bibin xwe û li ber xwe bidin. Li ser vê cihabê ingilizan berda giravê û şer dest pê kir.

Zimamdarên Vişiyê ji ev pêşnihad qebûl ne kir û Pêten û Laval û Darlan heryekî cihê cihê emir da walî û kumandarê Medegaskarê ko heta dawiyê şerê ingilizan bikin. Nemaze emiral Darlan di emirê xwe de di heqê ingilizan de tiştine gelek giran digotin. Emêrikê ji noteyek da bû Vişiyê. Laval li vê noteyê vegerand û hereketa ingiliz û emêrîkaniyan protêsto kir.

Em bên qada şer. Bendera Diêgo-Swarês dikeve bakurê Medegeskarê û jê bi erdekî teng veqetandî ye; heçko nivgiravek e. Di benderê de hawizên tersanê hene ko tê de krewzorên mezin ji cih dibin û têne tamîr kirin. Jû pê ve balafirgeh û depoyên benzînê lê hene. Devê benderê gelek teng e, avtengek e. Li her du milên avtengê topên peravin ên behrî hene. Ev top dûravêj in û nahilin ko dijmin di riya behirê re nizingî li benderê bike. Bi tevayî Diêgo-Swarês benderke nûjen tête hesêb.

Ingiliz digel tangine kiçik di paş benderê re daketin bejê û ji par re dirêjî benderê kirin û stola xwe ne xistin ber topên benderê. Herwekî me got frensizan dest bire xwe. Ingilizan noqar û vaporeke kiçik yên frensizan hin av kir û şer nemaze li bejê germ bû.

Li gora ajansan frensizan li Medegeskarê 7000 esker hebûn. Ji vî eskerî 2000 û hin li bendera Swarêsê bûn. Şerê Swarêsê sê rojan dom kir.

Li 8ê Gulanê piştî nivro Mister Çorçil di meclisê de da zanîn ko Diêgo—Swarês teslîm bûye. Mister Çorçil di vê babetê de gotiye: Berî sê mehan me dest bi karê Mede-

geskarê kiri bû. Di vê navê de fermandarên me tevdirên xwe ditin û herweki we ditiye eskerên me bi mêranî û qehremanî şer kir û di du roj û nîvan de bendara Swarêsê zemî kirin. Ev zefer gelek bi isûl û nizam çêbû û her sê çekên me bej û behir û hewayê hêjabûna xwe şanî dan. Midafihên firensiz ji xweş şer kirin. Lê heyfa min tête wan, yên ko dibî hevelbendên me bûn iro şerê me dikin. Em ji xelesa Frensê re dixebitin. Em dikarin vê xesara firensizan, fedakariyek di riya şerê xelasê de bihesibînin ».

Ji milê din Vîşiyê ji da zanin ko midafihên Swarêsê agir û birûskên xwe betal kirine û teslîm bûne lê eskerên din yên ko di cihên giravê ên din de ne ewê şêrê ingilizan bikin.

Rojnameyên ingilîzi û emêrikanî ji kêfa xwe gelek ji vê zeferê re anîne û pesnê eskerên ingilizî dane. Rojnameyên emêrikanî dibêjin ko Medegeskar xeleka sinsilekê a pêşîn e. Di pey Medegeskarê ji sondxwariyan re divêt Dekar û herçî mistemlekeyên firensizî yên ko di şer de bi kêri hevalbendan têن divêt bêne işxal kirin. Nîzingî Emêrîkayê ji hin giravên firensizî hene. Welê dixuye ko Emêrike ji bo selametiya hemiyan ewê esker derîne wan giravan.

Hin rojnamayên emêrikanî dibêjin madam firensizan di Medegeskarê de dest bire xwe êdî navhera Vişi û Emêrikayê şer e.

Mister Çorçil di meclisê de goti bû ko xesara ingilizan gihaştiye hezar peyayi. Lê piştre xuya kir ko xesara ingilizan jê kêmtir e. Peyayin hebûn ko hêsir keti bûn destê firensizan û ingilizan ji her ko pê ne dizanîn ew windayî dihesibandin. Piştî teslîmbûna bendeıê ew hêsîr vegeriyan cem xwediyan.

ŞERÊ FILÎPÎNÊ — Welê dixuye ko şerê Filîpînê bi temamî safî bûye û çend giravên hûr yên ko şer di wan de hêj dom dikir ew ji teslîm bûn. Di nav wan giravan de asêgeha Korêgidorê piştî ketina Batanê 27 rojan bi eskerekî hindik û bi çekine kêm şerê japonan kir.

Korêgidor li 6ê Gulanê teslîm bû. Lê hetanî ko dijmin pê li beja giravê ne kir û li stoyê midafihên wê siwar ne bû kelehê li ber xwe da û çekên xwe ne danî.

Japonan piştî ko 27 rojan li Korêgidorê ji Batanê bi guleyên topan û ji ezmanan bi bombeyên balafiran xist û dit ko keleh bi tu awayî teslîm nabe eskerên piyade xiste filûqan û di tariya şevê de berê wan da giravê. Midafihên Korêgidrê pê hesiyan û bi top û mitralyozan bera wan filûqan da. Di nav filûqan de gelek xesar digihan eskerên japonî. Esker xwe çeng kire avê, ji hev belav bû û bi melevaniyê gihaşte peravê. Gava lingên eskerên pêşin di giravê de erd girt, eskerên mayin bê zehmet digihaştin bejê. Fermandarê emêrikanî gava ev hal dit teslîm bû. Di pey Korêgidorê re giravên din jî ji desthilanînê geriyan û teslîm bûn û şerê Filipînê bi qehremaniya mêrên qenc û canfeda gihaşte dawiyê. Japonan bi xwe pesnê midafihên Korêgidorê da. Ma dijmin û mêrê qenc ji dost û mêrê pis ne çêtir e. Heye ko ji bo herkesî ne welê ye; lê eqilê min î kurdmancî holê dibêje.

ŞERÊ ÛRIS — Êrîşa Biharê hêj dest pê ne kir. Hin dibêjin ko eleman hêj tidarikên xwe temam ne kirine. Ji aliyê din li dawiya Nisanê di eniya ûris de hewa guhêriye. Ji nişkekê ve baranine xurt hatin û di pey baranê berf ji bari û dereca ko rabû bû heta 28an kete binê sifirê heta du derecan.

Di vê navê de Hitler peyivî Ev mideyek e rêberê elemanan xwe ker kiri bû. Li 26ê Nîsanê piştî nîvro Hitler di pêşberê meclisê de xeber da. Lê vê carê Hitler weke berê ne digot ezê vi şeri îsal biqedinim an ordiwa ûris ji hev de keliye û heta 15 rojan ewê çekên xwe deyne. Rêberê elemananan vê carê ji bervajî ve gelek ihtiyatkar bû. Ewçend ko çêlî Zivistaneke din jî kir.

Di vê gotara Hitler de niqta mihim işê daxilî ye. Dixuye ko Hitler ji hinan ne razî ye; divêt hin ji ji Hitler ne razî bin. Hitler got: « Dema ko bi hezaran xortên eleman di eniyên şer de ji bona xelasî û selametiya welêt xwe bi kuştin didin ez nikarim qail bibim ko qaziyên me bi xayin û caniyan re bi mihirvaniyê bi rê ve hiçin. Ji lewre ez ji we selahiyetina di ser selahiyetên edliyê re dixwazim ».

Meclisê ev selahiyet dane Hitler. Li gora van selahiyetan Hitler ji niho û pê de wê bikare bêî mihakeme her cezayî li xelkê bike. Divêt di hundirê Elemanyayê de hin tişt hebin ko ne bi kêfa Hitler in.

Yekê Gulanê cejina bolşêvikan e. Di vê rojê de Stalin serekê ûrisan ji ordiwê re emirek belav kir û nav di eskerên xwe da. Stalin di emirê xwe de nemaze gotiye ko iro Elemanye ji par qelstir e, herçî Rûsye iro ji destpêka şeri bi gelekî xurtir e û divêt eske-

rên sor isal elemanan ji erdê Rûsyayê bavêjin derve û bigehin zeferê.

Di navbera nitqa Hitler û emirê Stalin de hevdûditinek çêbû. Li 29ê Nisanê Hitler û Mûsolini li Selzbûrgê gihane hev. Weztrên wan yên xariciyê û pisporên wan ên eskeri ji bi wan re bûn. Hitler û Mûsolini qederê du rojan li cem hev man. Çi kirin, ne kirin; çi gotin, ne gotin; bivê nevê ev ne hatine belav kirin. Kurt û pist zehf in. Lê kes bi rastiyê nizane.

Dibêjin ko piştî vê hevdûditinê di riya Romanyeyê re gelek eskerên Italyanî diçin eniya şerê ûris.

Herwekî me got di eniya ûris de hêj tiştekî girane ne hatiye rû. Bi tenê li bakur û di dora Mûrmanskê û gola Ilmenê de ji pêşiya Gulanê ve eleman caripa zorê didin xetên ûrisan. Şerê balafiran roj bi roj xurtir dibe.

Li 13ê Gulanê ûris û elemanan ji nişkekê ve di danezanên xwe de dane zanin ko li Kerçê şerine no çêbûne û hêj çêdibin.

Kerç li nivroyê Rûsyayê, li bakurê Behira reş û di nivgirava Kirimê de ye û dikeve rohelatê nivgiravê. Kerç bi xwe ji nivgiravekê ditine pê û ev nivgirav bi bejtengekê bi nivgirava mezin Kirimê ve ye. Firehiya bejtengê qederê bist kilometiran e. Ji bejtengê heta pozê nivgiravê dera ko bajarê Kerçê lê ye 80 kilomêtir e.

Par, elemanan nivgirava Kirimê bi temami vegirti bû û rûs jê kişiya bûn. Lê li Zivistanê û gava behira Azovê cemidi bû ûris di ser qeşayê re derbas bûn zor dan elemanan û nivgirava Kerçê bi şûn de vegerandin û tê de cih bûn û nemaze bejtengê asê kirin. Pêşiya Kerçê avtengek e û jê re avtenga Kerçê dibêjin. Ev avteng Kirimê ji beja pêşmiqabil vediqetine û firehiya wê bi tenê çend kilomêtir in. Heke mirov derbasi beja pêşmiqabil bû dikeve riyên ko digehinin Qevqasê.

Li gora danezanên 13ê Gulanê elemanan li 8ê Gulanê û bi şefeqê ve dirêji nivgirava Kerçê kiriye û piştî şerine ko pênc rojan dom kir ûrisan xetên bejtengê ji dest dane û bi şûn de kişiyane. Eleman dibêjin ko ûris şerpeze bûne û tevli hev baz dane û bi hezeran hêsir û bi sedan top û tang ketine destê ordiwa wan. Lê herçî ûris derew bi aliyê van gotinan ve didin û dibêjin ko xesarine mezin gihandine elamanan û bi isûl û fesal û bi nizam û tertib ji xetên xwe rabûne, xwe dane paş û ketine xetine nû.

Ji milê din danezaneke rûsî ya 14ê Gulanê dide zanin ko ordiwa Mereşal Timoşenko dirêjiXerkarovê kiriye, elemanan baz daye û eskerên rûsî gihaştine heta girên ko li Xerkovê hikim dikin.

Digel vê hindê dibêjin ko şerê Kerçê ne destpêka êrişa Biharê ye. Ev şer erd xweş kirin e. Eleman dixwazin ûrisan ji Kerçê derinin û di erdê Kerçê de tidarika xwe ji bo hicûma Qevqasê bikin.

Li 15ê Gulanê eleman ketin bajar û bendera Kerçê û gihaştine avtenga Kerçê. Ev avteng behra Azovê digehine Behira-reş. Şerê Xerkovê bi şidet dom dike û radyowa Londrê dibêje hêj mexseda Timoşênko ne xuya ye.

ŞERÊ ROAVÊ — Di vê eniyê de şer gelek germ û nemaze bêeman bûye. Balafirên ingilizî bi şev û bi roj û bê etlahî di ser erdê Elemanyê û erdê Fransa vegirtî re difirin û bajar û destegahên wan didin ber bomban. Di vê navê de û li dawiya meha Nisanê balafirên ingilizi berdan bajarê Rostokê. Rostok di Rehira-baltikê de ye Bajarekî kiçik, lê tê de febrîkeyên balafirên Heynkel hene. Ingilizan sê çar caran li Rostokê xist û ew bi erdê re rast kir. Ji xelkê 8000 peya hatine kuştin 30000jî bê ban û sekan mane û guhastine bajarine din.

Li 3ê Gulanê balafirên ingilizî bi refine mezin direjî Hembûrgê kirine û ew dane ber bombayên xwe. Xesarine mezin çêbûne û bi hezaran peya hatine kuştin an birindar bûne.

Li 5ê Gulanê balafirên ingilizî gihaştine heta Danzingê yanî erdê Polanyayê. Danzing ji balafirgehên ingilizî divêt 1500 kilomêtir dûr bit. Heke destê ingilizan gihaşte Denzingê heye ko sibe balafirên wan xwe bigehinin xetên eniya ûris û ji par re li elemanên ko şerê ûrisan dikin bidin. Divêt ev balafir balafirine nû û dûrger bibin. Heye ko ev ji Emêrîkê hatine.

Hitler di gotara xwe de qala êrişên hewayî kirin û got heke ingilizan li xelkê me ê sivîl xist em jî emê derbên wan bi derbine jê xurtir li wan vegerînin. Bêdiro, ji hingê ve balafirên elemanî jî ji nû ve dest bi lêxistana bajarên ingilizi kirine. Lê derba elemanan ne weke berê, ne wek êrişên Tebax û Ilona sala 1940î ye; jê bi gelekî sistir e. Herçî ingiliz ji hingê ve gewr bûne.

ŞERÊ LÎBYAYÊ — Di şerê Libyayê de tiştekî nû nîne. Bi tenê bombardimanên Maltayê dom dikin. Girav li ber xwe dide. Lê li 8ê Gulanê kumandar û waliyê giravê istifa kiriye û yekî din li şûnê hate tayîn kirin. Sebeba vê istifayê ne hate seh kirin. Herwekî adet e, gotine ji ber sebebên sihî.

**GÎNA-NÛ Û EWISTRALYE** — Gina-nû dikeve bakurê Ewistralyayê û nizingî wê ye.. Japonan ji mêj ve avêti bû Gina-nû û bireki wê vegerti bû. Piştre emêrîkaniyan esker derêxisie giravê û êrişa japonan sekinand. Ji bingê ve japon di vê qadê de di midafehê de ne Bi tenê şerê balafiran e. Balafirên her du aliyan li balafirgeh û wargehên hev dixin. Li gora danezanên Weşingtonê balafirên emêrikanî xesarine mezin digehinin japonan.

Vê paşiyê di dora Ewistralyê û Gina-nû de şerekî behrî çêbû. Stola japanan û ya ingiliz û emêrîkaniyan qederê heft rojan ji 3e Gulanê heta 10ê wê li hev dan. Li gora danezanên emêrikanî dilê japonan bebû esker derînin giravên ko dikevin rohelatê Ewistralyayê. Stolên ingiliz û emêrîkani xesarine mezin gihandine stola japonî û ev stol pol poşman vegeriya wargehê xwe.

**MERTINIK** — Mertinik giravek ji giravên Entîlên kiçik e û ya Frensê ye. Mertinik li behira Etlantîkê û li rohelatê Emêrîka navîn e. Piştî mesela Medegeskarê rojnameyên emêrîkanî qala giravine Frensê en dın ji kiri bûn.

Li 10ê Gulanê hikûmeta Emêrîkê heyetek şande Mertinîkê û ev heyet rast bi rast bi waliyê Mertinîkê re kete mizakerê; hêj ko hikûmeta Vîşiyê bête serwext kirin Digel vê hindê waliyê firensiz hikûmeta xwe serwext kir û hikûmeta Vîşiyê di vê babetê de notak da Emêrîkayê. Lê wer dixuye ko Emêrîke naxwaze bi Vîşiyê re bide bistîne û ji xwe re çêtir dibîne işê xwe rast bi rast bi waliyê Mertinîkê safî bike.

Emêrike dibêje ko Mertinik wê firensiz bimîne û weke berê ala firensizî di ser seray û kelehên wê re wê li pêl bi bit. Bi tenê emêrîkanî ewê esker derînin bin cihên giravê û tê de wê cih bibin.

Li Martinîkê stoleke firensizî heye. divêt çekên vê stolê ji bêne rakirin. Di vê stolê de ji keştiyên hûr pê ve balafirhilgirek bi 22000 tonî û du krewzorên mezin hene. Jû pê ve li Martinîkê 140000 ton vaporên barkêş hene. Emêrike dixwaze van vaporan jî bistîne. Bi şertê ko kirê wan bide.

Hikûmeta Vîşiyê di nota xwe de çi gotiye ne nas e. Lê li gora nûçeyên paşîn dest bi jiçekirina cenkeştiyan kirine. Lê walî û heyeta emêrîkanî li ser tevayiya meselê hêj li hev ne hatine. Lê wer dixuye ko emêrîkanî bi çi awayî hebe ewê vî berî bibin serî.

**NÛÇEYÊN ECEMISTANÊ**—Piştî ko ûris û ingiliz ketine Ecemıstanê kurdên Ecemistanê hinek bihna xwe da. Lê eceman ev serbestî ji kurdan re liştekî zêde hesibande û ji nû ve dest bi şidandina kurdan kir. Li ser vê yekê kurd li ber hikûmeta Tehranê asê bûne. Ecem û kurdan li hev xistine. Di girtinhevên pêşîn de, wer dixuye, zora eceman çûye. Eceman di vê mehê de, li Tehranê ordiwek saz kiriye û li 18ê mehê ev ordû berê xwe da Kurdistanê.

Ji milê din waliyê Kurdmancşahê û serekên kurdan gihane hev û walî daxwaza kurdan ji serekan pirsî. Daxwazên kurdan ev in: Walî û herçî memûrên kurdistanê divêt kurd bibin û di dibistanên Kurdistanê de divêt her tişt bi zimanê kurdi bête xwendin. Ji van pê ve kurd dixwazin ko hatinên Kurdistanê li Kurdistanê bêne serf kirin.

Şam : 19 Gulan 1942 NÊREVAN

# BINGEHÊN GRAMÊRA KURDMANC

BI NAVÊ YEZDANÊ PAK Ê DILOVAN Û MIHIRVAN

— 14 —

## PRONAVA GIRÊKÎ

99 — Pronava girêkî dikeve paşiya navdêr an pronaveke din û wan bi komeka ko di pey wan re têt girêdide. Di zimanê kurdmancî de ji bo her du mêjer û zayendan bi tenê yek pronave girêkî heye ew jî «ko» ye.

Pronava « ko » di komekê de, li gora navdêra ko dinimîne carina kirar û carina jî bireser e.

Kirar : Mirovê ko tu ditî birayê min e.
Yê ko tu ditî birayê min e.
Bireser : Mirovê ko te dît birayê min e.
Yê ko te dît birayê min e.

Çend mîsalên din : Destmalên ko te kirîne spehî ne. Ez îro li hespê ko te dihî ji gund anî, siwar bûm. Çiyayê ko li pêş me ye Herekol e. Mifta ko min pê ev derî vedikir winda bûye.

100 — Herwekî di cih û deverê de dê bête gotin di zimanê kurdmancî de ji « ko » ya pronav pê ve « ko » ke din jî heye. Ew ko gihanek e û wezîfa wê di qisetê de weke dine. « Ko » ya gihanek dikeve navbera hevokên komekekê û wan digehîne hev. Ji lewre ev « ko » hergav dide pey lêkerekê : Min got ko ez nayim. Ew hatin ko me biezimînin.

Ev ko bi xwe gava bi mana « heke » ye bingê beriya lêkerê tête gotin : Ko Lêzgîn hat emê berin nêçîrê.

# Kitêbxana Hawarê

Hejmar:

1 — Rêzana Elfabiya Kurdî C. A. Bedir-Xan.
2 — Rupelnine Elfabê C. A. Bedir-Xan.
3 — Dilê Kurên Min Dr. K. A. Bedir-Xan.
4 — Biyişa Pêxember. Bi Kurdiya dumilî, bi dibaca C. A. Bedir-Xan
5 — Nivêjên Êzediyan bi dibaca C. A. Bedir-Xan
6 — Mektûb ji Mistefa Kemal paşê re
7 C. A. Bedir-Xan
1 — Mesela Kurdistanê Bazil Nikitin
8 — Ji mesela Kurdistanê C. A. Bedir-Xan
9 — Elfabeya Kurdî Dr. K. A. Bedir-Xan
10— Xwendina Kurdî Dr. K. A. Bedir-Xan
11— Elfabeya min Dr. K. A. Bedir-Xan
12— Dersên Şerietê Dr. K. A. Bedir-Xan
13— Çarînên Xeyam Dr. K. A. Bedir-Xan
14— Proverbes Kurdes. Medhelokên Kurdî Lucy Paule Margueritte û Emîr. K. A. Bedir-Xan Paris - 1937
15— Le roi du Kurdistan. Qralê Kurdistanê. Emir K. F. Bedir-Xan û Adolphe de Falgerolle. Paris - 1937
6— Der Adler von Kurdistan. Eyloyê Kurdistanê. Prinz K. A Bedir-Xan û Herbert Örtel Berlin - 1937
17— Der Schnee Des Lichtes. Berfa Ronahiyê. Şihrên Kurdî Prinz. K. A. Bedir-Xan û Dr. Curt Wunderlich Berlin - 1937

Kiriya Hawarê 500 Qirûşên Sûrî

---

**Xwedî û gerînendeyê berpirsiyar: Mîr Celadet Alî Bedir-Xan. Şam—Sûriye**
**Directeur Propriétaire: Emir Djéladet Aali Bedir-Khan. Damas—Syrie**

SAL 10
HEJMER 45
ŞEMBÎ
20 HIZÊRAN 1942

ANNEE 10
NUMÉRO 45
SAMEDI
20 JUIN 1942

# HAWAR

## K'OVARA KURDÎ ✶ REVUE KURDE

TÊXISTIYÊN VÊ HEJMARÊ



ŞAM—1942
ÇAPXANA SEBATÊ

118 — Gelî bawermendino...... Cuhiyan me kin hevalê xwe; divê misilman di nav xwe de bibin hevalên hev. Cuhi bi her awayî xirabiya we dixwazin û tu cara jê dest na kişînin; ew minêkarê perîşanî û şermisariya we ne. Dilê wan ji dev û gotina wan reştir e. Em ayet û şîretên xwe şanî we didin da ko hon pê serwext bibin.

Heke we seh bikira.....

119 — Geli bawermendino... Divê honê halê cuhiyan xweş bizanin. Hon heji wan dikin, lê ew ji we hez nakin. We baweriya xwe bi hemî kitêbên Xwedê aniye; ew bi tenê gava bi we re ne dibêjin: Me baweriya xwe bi Quranê aniye, lê gava ji we vediqetin û bi tenê dimînin, ji erna xwe kumikên tiliyên xwe gez dikin.

Pêxemberê min.... Bêje wan: Di erna xwe de bifetisin... Yezdan kin û erna dilê wan dizane.

120 — Gava qenciyek digehe we, ji dexsê bihna wan teng dibe û mirûçê wan diqermiçe; lê gava xirabiyek dest bi we dike, we diêşîne, rûyê wan dikene, kêfxweş dibin. Heke hon seh dikin û ji Xudayê xwe tirsiyar in, bizanin ko zerera kîn û hîlebaziya wan nagihe we; ji ber ko zanîna Yezden dora emelên wan digire û cezayê wan mizawiran dide.

121 — Wê demê bîne bîra xwe.... Te sibe zû zaroyên xwe berda û bi qesda rastkirina şergehekê — ji bo bawermendan — tu ji mala xwe derketî. Xuda bihistiyar û zana ye.

122 — Du bir ji we, dest bi bazdanê kiri bûn. Lê piştre zanîn ko Xwedê xwedî û arikarê wan e. Misilman divê dilê xwe bi Xwedê bigirin, Yezdan nisretê dide wan.

123 — Di şerê Bedir de jî, hon hindik bûn; lê Xuda ji kerema xwe nisret da we; ji Xudayê xwe tirsiyar bibin da ko hon bi nîmeta wî şikirdar bibin.

124 — Pêxemberê min... te ji bawermendan re digot: Xuda bi sê hezar melyaketên ko da dahatin arikariya we dikir; ma ev ne besî we ye.

125 — Heke hon dilê xwe sist na kin, sebr dikin, guhadrê emrên pêxemberê xwe dibin û jê ditirsin; bizanin ko heke dijminên we li we har bûn, Yezdan bi pênc hezar melyaketên nîşankirî arikariya we dike.

126 — Herwekî Xuda ji we hez dikir, bi vê arîkariyê mizgîniyê dide we, ta ko tirs ne keve dilê we, dilê we sist ne be. Di şerî de nisret ji kerem û dana Xwedê ye. Xuda fêris û delal e.

127 — Xuda di roja şerê Bedir de ji kerema xwe bi kuştina hin kafiran û bi xistina hinên din li erdê, zora wan bir, ew şikestin û nisret da we.

128 — Heke Xwedê dixwaze tobe dide wan, an wan diêşîne, ji ber ko ew zalim in. Pêxemberê min... Tu têkilî şixlê wan nabî.

129 — Her tiştên erd û ezmanan milkê wî ne; ji her kesî re ko dixwaze tobe dide û her kesê ko dixwaze diêşîne. Xuda gunehan xira dike, Xuda piyar e.

130 — Gelî bawermendino.... Du bare, sê bare faîzê mestînin û me xwin, ji Xudayê xwe tirsiyar bibin da ko hon ji ezabê axiretê ewle bin; ezabê axiretê ne gihe we.

131 — Ji agirê ko ji bo kafiran hatiye dadan, we hay ji xwe hebin, jê bitirsin.

132 — Bindestiya emrên Xuda û pêxemberê di wî bikin ta ko hon bigehin rehma Xwedê.

133 — Li hev anîna tiştên rast û qenc de lezê bikine xwe heta ko hon bigehin xifrana Xwedê û bihuşta ko pehnî, firehî ê mezinahiya wê bi qasî erd û ezmanan e û ji bo mirovên dilpak û bawermend hatiye ava kirin.

134 — Yên ko di tengî û firehiyê de destvekirî ne û arîkariya mirovan dikin, erna xwe hiltînin, xwe digirin û xelkê di sûçên xwe dibortnin bila bizanin.... Xwedê hejî qencîkeran dike.

135 — Yên ko tiştekî neçê dikin an ezabdarê nefsa xwe dibin, divê Xwedê

bînin bîra xwe, tobedarê wî bibin û jê toban bixwazin. Ma ji Xuda pê ve kî dikare di gunehê xelkê bibore. Ew divê ji xirabiya ko kirine û pê bîrewer bûne destê xwe bikişînin û lê venegerin.

136 — Mikafatê qencikeran çiqas spehî ye, Xuda gunehên di wan efiw dike, ji bona wan bihuştine têr av û kanî hene û ew tê de her dimînin.

137 — Berî we jî, ji miletên dinyayê re emrên Xuda dahat û pir tişt qewimîne.... Di erdê de bigerin û xweş binêrin; gelo dawiya dilxar û derewkeran çawan bû.

138 — Quran halê wan pêş we dike, riya rastiyê şanî we dide û li mirovên ko ji Xwedê ditirsin şîretan dike.

140 — Gava hon bikevin tengiyê, birîndar dibin, binin bîra xwe ko ew tiştên ha li dijminên we jî diqewimin. Carna hon, carna ew birîndar dibin. Xuda bi vî awayî we diceribîne û mirovên bawermend nas dike û wan digehîne nîmeta şehadetê. Xwedê ji xedaran hez na ke.

141 — Xuda bi vî awayî, mirovên bawermend ji gunehan paqij dike û pê kafiran diperçiqîne.

142 — Gelo we ji xwe re digot.... berî ko Xwedê şerkerên riya cihadê û mirovên xudansebr nas bike, honê hema bikevin bihuştê.

143 — Beriya ko şer û kuştin destpê bike hon di riya Xuda de mirêkarê mirinê dibûn, lê gava ev çêbû, we ji dûr ve nihêrt.

144 — Mihemed pêxemberek e, berî wî jî pêxemberên din hatin û çûn, heke ew bimira an bihata kuştin ma hewe pişt pehniya xwe bi wan ve bikira û baz bidaya. Yên ko baz didin zererekê jî nagihînin Xuda. Ew ezabdarên nefsa xwe ne. Yezdan ne hewceyê mêraniya wan e. Lê Xuda camêr û şikirdaran digihîne xeyr û qenciyê.

145 — Tu kes bê emrê Xwedê na mire, dema mirina her nefsekî li cem Xuda nas e. Em ji mirovan re, wextê ko ew sewaba dinyayê dixwazin, jê didin û ji yên di re ko ji ya axiretê dixwazin wê digehînin wan.

146 — Ma çend car pêxemberên Xuda bi komên mezin re dest bi şerî kirin û hatin kuştin, lê wan tu cara dilê xwe sist ne kir, ji şerên riya Xwedê aciz ne bûne, wan xwe ne avêt bextê dijminên xwe, xwe pîs ne kirin; Xuda ji mirovên dilgirtî û xudansebr hez dike.

147 — Gotina wan ev bû û wan ji vê pê ve tiştik ne digotin: Xudayê me, di gunehên me bibore, dilê me bişidîne û li ser qewmê kafiran nisretê bide me.

148 — Yezdan ji kerema xwe ji wan re sewaba dinyayê, nisret û dewlemendiyê û sewaba axiretê a spehî û qedirbilind, bihuşt da. Xuda hejî qencîkeran dike.

149 — Gelî bawermendino.... Heke hon, guh li kafiran didin, ew we vedigerînin li ser dinê xwe û dinya û axireta we diçe, winda dibe.

150 — Lê hon dizanin... Xudan û sermiyanê we Yezdan e, Xudan û sermiyanê bilindtir û spehîtir ew e.

151 — Emê dilê kafiran bitirsînin... Ji ber ko wan, bê izna Xwedê tiştine dikirin hevber û hempayê Xwedê. Cihê wan dojeh e, dojeh ji xedaran re cihekî têr êş û têr ezab e.

152 — Xuda li ser gotina xwe sekiniye, lê diviya bû, hon dest bi kuştina dijminên xwe bikin. We çi kir? we sistî û kêmasî kir, we guh ne da emrên pêxemberê xwe, we baz da, her çend ji riya nisretê pêş we de bû; hin ji we ketin pey malê dinyayê, dest bi talanî kirin; ji we, bi tenê hinan di riya Xwedê de dest ji şer û kuştinê ber ne dan. Ji bo ceribandina we. Yezdan berê we ji dijminên we zivirandin û wî hon şikênadnin. Piştre, herwekî hon poşman bûne, Xuda efiw da we; Xuda bi bawermendan re comerd, delal û keremkar e.

# SEGÊ JAR
## Û ŞÊXÊ TEYLES

Di dema Silêman pêxember de şêxekî teyles hebû. Cilên wî ciline kesk bûn. Zor zor birûmet bû. Karê wî ticaret bû. Bi xwe li bajarekî dadenişt. Di sûka ticaretê de bi keskên xwe û cilên xwe ên teylesan zora herkesî dibirî bû.

Şêx heroj beyaniyan ji mal der diçû û taşt ne dixwar. Qîza wî a biçûk taşta wî, jê re, dibire sûkê. Rojekê ji rojan qîzika şêx rabû, taşta bavê xwe jê ra bir. Teqereza Xwedê, wê rojê taşta şexê min keleparçe bû.

Wekû taşt geha cem şêx û rabişte xwarinê, wî çaxî, segekî jar û melûl û bêxweyî yê ko li wê rê bû; xwe avêti bû erdê û temayî dikir ko şêx çend hestiyan pavêjit ber wî da ko pi wan hestiyan debara xwe bikit, heya çend demekê.

Ko şêx taşt dixwar çi dikir? Hema wî goşt ji hestiyan vedikir û dixwar û hestî li tenişta xwe dikir kom. Segê jar wî çaxî kuriya xwe li bijiya xwe dida û dihejand û çavên wî biraberê şexê kesk req bûn. Lê çu himet ji şêx ne dîtin. Wî çaxî çavên qîza şêx bi dîlovaniyê bi layê seg ve çû û dilê wê ê kaçûç pê şewitî. Çavên xwe bi dilovanî ji seg vegerand û bi çaveki xezebê nêri Bavê xwe û got ê:

— Bavo tu çira van hestiyan li tenişta xwe diki kom û. nadî vi segê jar û birçî, ne guneh e, hinde ew li te dinêrit.

Bavê wê yê ko şêxê Xwedê bû, lê vegerand û got:

— Qîza min, bisekine ez ji xwarina xwe xelas bibim, ez dê bidim ê.

Ko şêx ji xwarinê xelas bû dest bire hestiyan û ew lûlaq yek bi yek li ser segê jar wer kirin û lêxistin; heya ko yek ji wan lûleqan li ser destê segê jar ket û destê wî şkand. Wî çaxî segê jar bi qirin û hewar û fixan qesta Silêman pêxember kir û çû cem wî; da ko gili û gazindiyên perişaniya xwe ji destê şêxê kesk i rihzerê tacir bikit. Ko giha cem Silêman agehiya daberiztna şêx li ser wê da zanîn.

Wî çaxî giliyên hemî beşeran û heywanan diçûn cem Silêman. Ko Silêman segê jar di wê perişaniyê de dît dilê wî dilovan bi perişaniya wî peritî. Wê gavê ... xwe da bi layê balbasên xwe ve û ferman kir ser wan û gote wan:

— Zûka, zûka wî şexê kesk î rihzer û tacir yê ko daberizî ser segê jar bînin hire; da ko ez tola vî rebenî jê vekim.

Balbas çûn û şêx anîn cem Silêman û li navbera destên wî rawestandin. Silêman hakimekî zor adil û heqperest bû. Ko Silêman şêx dît bi çavê xezebê lê nêrî û got:

— Şêxê rihzer û kesk, te çire li vî segê jar xist, heya ko te destê wî şkand; ma te bext nîne? Çire heya vê derecê tu bi zaran ra sitemkar î? Hey bêbext û bê kovan....

Silêman qedereki lê nêrî; paşê careke din li şêx vegeriya û got ê:

— Tu bo çi dey naki, ma ji ber çi te destê wî şikand, bi min bêje.

Şêx çavên xwe pil kirin û bi vî awayî cehaba xwe da û got:

— Ya pêxemberê Xwedê, tu pê agah i ko ev seg segeki herimi ye û pis e, ev heroj têt cem min. Ji min re ne çak e çu se li nizingahiya min rûnin da ez ne herimim, da xelk xwe ji min nedin paş.

Silêman pêxember lê vegerand û got:

— Ma te, an Xwedê ew inandiye Cihanê, hey bêbext

Silêman berê xwe ji şêx dagerand û gote segê jar.

— Segê jar bixwaze, ez bo te çi tol ji şêxê daberizî bistînim.

Segê jar ma sekinî û haziran xwe ker kir. Silêman careke din gote seyê jar:

— Ez bo te destê şêx pêş destê te ve bişkînin

Seg li Silêman vegerand û got:

— No, ne destê min, ne destê wî bi tinha ye. Bi destşikandina wî gelek zîç û zaroyan wê heyf bibin; bextê min qebûl nakit

Silêman lê nêri û got.

— Dixwazî ez wî bo te hebis kim

Segê jar bi hebiskirina şêx jî qail ne bû. Silêman gelek di gumana tolvekirina segê jar da ma; serê xwe li ser singa xwe rakir û li seg got:

— Pa ez ji te re çi li şêx bikim bêje

Seg li Silêman vegerand û got:

— Ezbenî ez ji te dixwazim ko van cilên şêx yên baweriyê jê vekî û cilên wek yên xelkê li ber wî bikî da ko beywanên din wek min jar û reben bi van cilan nexapin û nizingî li şêx nekin. Her ez vî ji te dixwazin..

Silêman ferman kir cilên şêx jê kirin û ciline adetî lê kirin.

Çiqas xiyala xwe didim vê çîrokê, di

# DÎWANA MELÊ

— 26 —

Pir meke israf di qetli mibah
Sefki demi aşiq mala yibah [1]
Sine bi dest xwe mibarek veke
Te'refu kem fî kebedî min cirah [2]
Dil ji hewaya te di fikrên dihûr
Fî liceci beyni hibûbir-riyah [3]
Eşq giha kê û li eqli xo ma
Yefteku bil aşiqi hisnil melah [4]
Dê du siyeh sirmeyê çehvên xwe kit
Xaki reh yari seba her sebah
Toz û xibarê seherê pir çlneş
Qed neşere-l-tey-yibû bilmiski fah [5]
Fêris û rimbaz gihane yek bi tir
Ehmede fil-beyni qetîlir-rimah [6]
Bûsezenan her ki ber an asitan
Mek-kene min cebhetil ebrah [7]
Hel-le lehûl qetle bi şeri'l huda [8]
Men keşefes-sire bis-siri bah [9]
Hisn û edaya te mela herkî dî
Seh-he lehû in-neke eynil fesah [10]

(١) سفك دم العاشق ما لايباح
(٢) تعرف كم في كبدي من جراح
(٣) في لجج بين هبوب الرياح
(٤) يفتك بالعاشق حسن الملاح
(٥) قد نشر الطيب وبالمسك فاح
(٦) احمد في البين قتيل الرماح
(٧) مكن من جبهة الابراح
(٨) حل له القتل بشرع الهدى
(٩) من كشف السر وبالسر باح
(١٠) صح له انك عين الفصاح

— 27 —

Heyfû qeyda xak û gul bit arifû çalak rûh
Da micer-red bit ko pertew det ji nû ew pak rûh
Qeydi xak û gul nebit da bê,hicab û perde bî
Misli bedrê carinan têxit xisûfê xak rûh
Şemhi sir nûr naditin ger ew nekit perhizi dil
Zewqi cama eşqê nakit ger nekit imsak rûh
Dil bi tayek nêrgizan dih nazikek terwende dih
Gul dikin teşbîhi xaran her xes û xaşak rûh
Cami eşqê paki rûhanî tihûra batin e
Ê nenûşî her we ma bet-ta ebed napak rûh
Heyeta kêf û kemê bê kêf û kêfa arif e
Dê bimînit ger nebit naçar hê tiryak rûh
Dê bi gulzara cemala sebzepûşan dê çi bit
Ey di mihrê da nebî dil pare pare çak rûh
Bil ji can der-rakeyek rewşentir û wala divêt
Sûreti hisna miqed-des da bikit idrak rûh
Ger xeberdar î ji sir-ra « kunhi kenze » guh bidêr
Da bi sed nûrî beyan kit maneyê lewlak rûh
Lamihi sir-ra tecel-lî ser li tora dil dikit
Zebt nakit wê mecalê sed hezar eflaki rûh
Her du êlanên te dî min toqi gerden kir midam
Da me her bêtin tebes-sim wek gula Deh-haki rûh
Cewheri hisna eda tenha dibit meqbûli tebh
Ger ne seyqel dit bi nûri eşq wek hek-kaki rûh
Dê bi vî endaz û terzî key bibit sihrê hilal
Ger ne bala tebh bit wek pehlewan çalak rûh
Dilber-im avêt melê wî barî kir qewsê şevê
Dê bidit her gezmeyan bêsûc e ew sef-faki rûh
Şehsiwar îro kemend avêtine qelbê Melê
Bend nakit xeyrî fetraka te sed fetrak rûh.

— 28 —

Eşqê ko bidin bi yek du erwah
Pêweste di vê bi hev bin eşbah
Can û cesedan ko it-tihad e
Wel ma lehil-mizac bir-rah [1]
Wesla te li can û dil heyat e
Men zaqe meraretel-newa tah [2]
Tenha ne di sine min xedeng in
Min lehzeke fil-qilûbi ermah [3]
Perwin ji şefeq seher xuya bûn
La bed' we fihi minke misbah [4]
Lew mest û minel hewa keban in
La bed' we qed timilû erwah [5]
Her şam û seher bi destê xoban
Min xemretina tedûh eqdah [6]
Ifteh bi liqakê qifli qelbî
Fel-qelbû lehû liqak mifteh [7]
Sey-yah me dîn di xelwe îro
El-lah ko çi xelwe û çi sey-yah
Berqê ko veda ji ber niqabê
Wel-lami' min sinah qed lah [8]
Qews û qezehan me dîn ji bala
Wel-enberû men şezah qed fah [9]
Ayineyi dil Mela cila dih
Min tele'tehû feqed sefar-rah [10]

(١) والماء له المزاج بالراح
(٢) من ذاق مرارة النوى طاح
(٣) من لحظك في القلوب ارماح
(٤) لابدع وفيه منك مصباح
(٥) لابدع وقد تميل ارواح
(٦) من خمرتنا تدوح أقداح
(٧) فالقلب له لقاك مفتاح
(٨) واللامع من سناه قد لاح
(٩) والعنبر من شذاه قد فاح
(١٠) من طلعته فقد صفا الراح

---

dilê xwe de dibêjim ma kengê li Kurdistanê de ji ev hikimdarê adil rabit û van cilên teyles ji me bikit û xelkê wekû segê jar dilşad bikit. ŞÊX ABID

# BÎR Û BÊRÎ

Wextê em di Kurdistanê de digerihayin û berê me diket çêl, çiya û zozanên Kurdistanê en bilind û rengin û em derdiketin ser serên wan û me temaşa li dinyaya Kurdistanê dikir û li her çarexên xwe dinêrî; me didît ko ew kaş, kendal, beroj, pesar, lat û zinarên welatê Kurdistanê heryek bi awa û rengekî spehî xemiliye.

Hinek jê heşin in, avên sar û cemidî jê derdikevin û serhejêrî mêrg û çimenan dibin û her texlît gul û gulçîçek li ber wan heşin dibin û bilbil û şehlûl di nav wan gulên bibindar de heryekî bi reng û awazekî dixwînin û distrin.

Hinek jê zer in; giya û guliyên wan nizikî hişkbinê bûne. Bûkik û kumikên wan diwerihin û bihina wan belav dibit. Ba û hewa wê bihinê difirînin û li ser mirovan de tînin. Difina mirov hergav bihina xweş bildikişînit û mirov tucar bê bihina xweş naminit û pelên ewrên reş û tarî li ser re rawestane; û siha wan dikevit ser wan gul û giyayên zer; û hêdû hêdû taviyên baranê jê dirijihin û dibarin ser wan. Ji nû ve destekî din gul û giyayên nû serên xwe hildidin û derdikevin û ji binê xwe heşin dibin û ber hev lil radibin û xwe li stoyên hevdû dipêçin û herweki keskesorên meha Adar û Nîsanê xuya dikin.

Hinek jê reş in; ji ber ko hingî hemiz û têk re ne û têrdar in û terh û şitilên wan ên zirav û dirêj pal dane hev; gulî helçimên wan ser hev de xelihane û dihejin. Ba û hewayekî hûr û rahet li wan didin û ser hev de xwîl dikin û wan dikin gimş û di nav wan de xawişe, rizde û berên mezin û ferşên tûl û bilû hene. Ronahiya wan li wê reşatiyê didit; mirov dikarit wan ji hevdû ferq hikit.

Hinek jê çiya û rûyalên mebeb û mezin û bilind in. Navser, pal û pebnavên wan fireh û vekirı ne. Ko mirov derket ser serên wan û li ber xwe de nêrî û fedkirî mirov dibinit ko ser dinyayê ketiye. Herweki mirov li ezmanan bifirit; welê dinya, çêl û çiya li pêş çavên mirov ve hûr û kiçik xuya dikin û hemî ji mirov nizimtir e û li bin mirovan re ye. Ew nav û heyina vala vekirî, beredayî navbera gelî û newalan de li hewa pêl bi pêl her texlît reng û lewin weke filimê sînemayê dikişînit û li ber çehvên mirov re tinit û diborînit. Ko mirov li rasta singê xwe û li ser xwe re li wan hêsû û bistî û sermilên bilind dinêrit dibinit ko roj û ezmanan pêk ,ve pala xwe dane ser wan. Û ew sermil û çiya û hêsû ji wan re bûne balgeh û nalbentşk û pêk ve mane û bûne yek û welê dixweyin.

Gava min holê li wan dinêri û ew tişt diditin, min xwe ji bîr dikir û di dilê min de tu meraq, kul û keser ne diman û min digot ko niho ez giham mexsed û miradu xwe. Ew tişta min ji Xwedê xwestî da min. Ew jî bihuşta weletê min, welatê Kurdistanê ye.

Car caran min digot xelk çiqas bêeqil in. Li bajaran perên xwe didin û diçin sînemanû xisara xwe dikin. Ma çire nayên Kurdistanê û seyra sînema û bihuştên wê nakin. Hemû belaş in.

M. E. BOTÎ

# ÇIYAYÊ CÛDÎ

Serê çiyayê Cûdî tu raweste û binêr
Axa welatê kurdan hemî zîv e û tev zêr
Ji wê dê tu dibînî Şernex Zaxo û Cizîr
Sed heyf û sed mixabin hemî bê bakim û mîr
Gulî, sindî, silopî weko eynê diyar e
Bêspin Bêşêr û Hevler hatin bi yadigar e
Berde Dêrgul, Herekol, heta biçit Piştkever
Tor û Şingar û Bêxêr kêla Memê beranber
Hêmî qesta te dikin, ey Cûdiyê miradan
Tu qiblegah î îro ji bo vî qewmê kurdan
Çendî xweş î, bilind î, tu ey çiyayê Cûdî
Te çend nav û nîşan hişt ji bo vî qewmê kurdî
Bejna te bejna Zînê, mêranî wek Memê al
Dinalim ser te îro ji qehran hûme evdal
Taca serê te zêrîn, tu serbilindê Eyran
Wextek hebî te zû da, hemî ji bo te heyran
Heke nîzik heke dûr, weko Mekeh Medînê
Ev jî cibek miqedes werin da em herin ê
Ko roj hate rasta te, heval heyiv û stêr in
Li vê rewş û xemla te, hemî pêk ve dinêrin
Selam û erzi hirmet ji bo Cûdî Nûh-nebî
Tu misteheqî fexr î bibêjî ma kî hebî
Botî bo te dibêjit hero sed car ezbenî
Taqê eywana Kesra li pêş te her dikenî.

M. E. BOTÎ

# MEMOZÎN

Rehmetî Hacî Evdilqadirê Koyî der heqê Memozînê digot: « Kitêba miletê me ye ». Holê digot; ji her ko di gotina « quran an mishefa miletê me ye » de ji Qurana ezîmişan re kêmhirmetiyek didît. Batin bi çi awayî bêne eşkere kirin mexsed û mirazê di xwe de vedişêrin.

Herwekî me di benda « klasikên me » de dot ( Hawar: 33 ) Hacî perestişkarê Xanî bû û xwe şagirtê wî dihesiband. Hacî di dîwana xwe de gelek çêl li Xanî kiriye. Efsûs ew dîwan ji bo îro windayî ye Bi tenê şihreke wî bi min re heye. Hacî ev şihir bi destê xwe li ser Memozîna bavê min a destnivîs nivîsandiye. Ez wê şihirê careke din diguhêzinim stûnên Hawarê:

Zemane resmi carani ne mawe
Çiraxî nazim û minşî kujawe
Le dewri ême roman û ceride
Egerçî meqsed e zanîni baw e
Eman qedrê bizane em kitêbe
Le dinya êstekî hemtay ne mawe
Le eyamî heyati şêxi Xani
Le ser nisxey xet ew nûsirawe
Le layî erbabi xoy bo qedr û qiymet
Xezîney gewher e û kisey diraw e
Le mecmûhi diwel, Soran û Botan
Le sayey em kitêbe nasirawe
Le kurdan xeyri Haci û şêxi Xanî
Esasi nezmi kurdi danenawe.

Heçî kurdên birewer bêt min û bêt Hacîjîqenc bir dibin Memozîn çi ye û Xanî kî ye.

Xanî ew mirov e ko gava xelkê Ewropayê hevûdin ji bo dozên mezhebî dikuştin, li miliyeta xwe hişyar bûye; dil kiriye û xebitiye miletê xwe ji hişyar bike û wî bigehîne azahî û serxwebûnê. Milet pê ve ne çû. Ji ber ko wî, tiştên ko Xanî digotin bir ne dihirin, ew seh ne dikirin. Wek her mirovê mezin, wek her pêxemberî Xanî ji beriya wextê xwe hatî bû; wextê wî ew seh ne kiri bû. Gava Xanî berevaniya milet, nijad û welatê xwe dikir welatiyên wî li ber tiştine din sekinî bûn.

Me got ko Xanî wek her mirovê mezin û her pêxemiberî beriya wextê xwe hatiye. Ma gelo welê ye ? An ew di wextê xwe de têu û tov li erdê wer dikin. Ev tov heta ko şîn bibe mideki dirêj li bin erdê dimîne. Heye ko ji lewre dibêjin filan beriya wextê xwe hatiye. Tovê Xanî ev sê sed sal in li bin erdê ye. Ma hêj dema şînbûna wî ne hatiye Ev çend sal in zeviya Xanî di hin cihan de dest bi şînbûnê kiriye.

Ji hejmara Hawarê a 35an ve me dest bi belavkirina Dîwana Melê kir. Ji vê hejmarê ve ji emê Menozîna Ehmedê Xanî bi tipên kurdmancî dê belav bikin.

Ji esera Xanî re Memozîn dibêjin. Ev gotin ji du bêjeyan bihevketî ye. Mem û Zîn; navên qehremanên çîrokê. Lê melayên kurdan ew xistine sikilê Memozîn û îro jê re ji « Mem û Zîn » bêtir « Memozîn » tête gotin.

Xanî binyanê esera xwe ji destana Memê Alan girtiye; lê ew weke xwe ne hiştiye û gelek tiştên wê guhartine. Xanî bi vî awayî ji Memê Alan re guhartoke nû guhartoke nivîsandî saz kiriye û ev guharto di hin cihên Kurdistanê, nemaze di cihên ko lê de medrese hene, li guhartoyên xelkê tesîr kiriye û ew kêm û zêde daye guhartin.

Belê feqehên ko di medresan de Memozîn dixwendin, di civatên begler û axeleran de qesîdeyên Xanî bi saz û qeyde digotin. Dengbêjên ko di wan civatan de qesîdeyên Xanî seh dikirin hin birên wan qesîdan bi islûbên xwe dixistin kilam û stranên xwe û bi vî awayî di Memê Alana di wî welatî de de hin tişt dibatin guhartin. Bivê nevê wan dengbêjan qesîdeyên Xanî xelet û li gora xwe seh dikirin û stranên xwe bi vî terzî diedîlandin. Bi vî awayî Memê Alana xelkê ji Memozîna Xanî carina tiştine welê digirtin ko Xanî ew bi xwe tucaran ne gotî bûn.

Ji xwe me dil heye di cih û deverê de em li van ferqan işaret bikin û guhartoyên xelkê deynin ber guhartoya Xanî.

Xelk îro ji, esera Xanî ji dastana xelkê ferq dikin û dibêjin li gora Memê-Alan Mem padîşahê welatê mixribiyan e, û li gora Memozînê, Mem. kurê debîrê dîwana Mîr e.

Em ji dema qala van her du eseran bikin ji ya Xanî re Memozîn û ji ya xelkê re Memê-Alen dê bibêjin.

Xanî Memozîna xwe bi 50 qesîdan lêk vekiriye û di qesîdeyên pêşîn de qala Xwedê, pêxember; kurdîtî û Mirê Botan kiriye.

Li ser qesîdeyên Memozînê li şûna sernamê çend xêzik nesir hene. Ev xêzik Xanî bi xwe nivîsandine an hinên din piştre ew bi ser ve zêde kirine em pê nizanin. Herçî ji hebe ew nesir ne rast în. Islûba wan ne kurdmancî ne farisî ne jî erebî ye. Ev nivîsar ji her du islûban der, ne nezim ne jî nesir in. Digel vê hindê em van xêzikan diguhêzînin

stûnên xwe da ko minbowa li ber destê me weke xwe bikeve destê nifşên ayendê.

Qestda pêşîn li ser Xwedê ye û bê sername ye. Xanî di malika vê qestdê a pêşîn de bi mecaz dibêje ko ev qestde sernama kilêbê bi xwe ye.

— 1 —

Sernamei name nami El-lah
Bê nami wî natemam e wel-lah
Ey metlei hisni eşqbazî
Mehbûbi heqiqî û mecazî
Namê te ye lewhi namiya eşq
Ismê te ye neqşi xamiya eşq
Bê neqşi te neqşi xame xam e
Bê nami te name natemam e
Namê te ye şahi beyti meqsûd
Fihristi mikatebati mehmûd
Mezmûni miraselati lareyb
Meşhûdi mikaşefati bilxeyb
Mahbûbi qilûbi men lehil qelb
Qelban tu diki bi ba xwe ve celb
Maşûq tu yî bi fexr û nazî
Aşiq tu î lêk bêniyaz î
Mitleq tu mifîd û mistefad î
Bê şibhe mirîd û hem mirad î
Nûr î, tu di hisni rûyi dildar
Nar î, tu di qelbi aşiqi zar
Şemh î, ne ji qismi nûr û nar î
Şems î, ji eyan tu perdedar î
Genc î, tu di nêv tilismi alem
Kenz î, tu eyan ji ismi adem
Ev alem û ademî û meşhûd
Ev mimkin û masiwayi mewcûd
Hemiyan bi te ye midare û debr
Fey-yazi riyazi xulki wel-emr
Emrê te bi lefzi « kun » [1] du alem
Mewcûd kirin xerez çi adem
Adem bi xwe yek ji her diwan e
Yek herf ji emri « kun-fekane »
Ew herf heqîqeta miheq-qeq
Hem emr e bi qudreta te hem xelq
Eşbah mires-sem in ji nasût
Erwah miwes-sem in bi lahût
Ev rûh û cesed bi cebr û ikrah
Tezwîc bitvin bi emri El-lah
Nasûti egerçi rengsifal e
Lahûti ji pertewa cemal e
Herfa ko me gotî neqşi hûr e
Lê meqsed û maniya wê kûr e
Zahir te eger ne maye sixra
Batin ew e, neqşi xame kubra
Mewcûd e di wê şehadet û xeyb
Meşhûd e di wê siyadet û eyb

Insan bi xwe hem zilam e hem nûr
Adem ji te hem qerib e hem dûr
Hindê weko cinsi alemi ne
Ew tabi'i new'i ademi ne
Evrenge felek hemi miez-zem
Evçende melek hemî miker-rem
Ev karigeha ezim û dew-war
Ev barigeha bedî û sey-yar
Evçende zemin digel enasir
Evrengehe erd digel cewahir
Evçendehe nimet û nefais
Evrengehe me'kel û melabis
Evçendehe mid-dea û metlûb
Evrengehe miştehà û mehbûb
Heywan û meadin û nebatat
Metlûb û meqasid û miradat
Bilcimle ji bo me re li kar in
Filcimle ji bo me ber debar in
Heq-qa ko te xweş nizam û rewneq
Tertib kirin ji bo me elheq
Em xafil û atil û gunehkar
Mayîne di qeydi nefsi em-mar
Nînin me di qelbi fikr û zikrek
Nakin bi zebanî hemd û şikrek
Xanî ko nehin bi qelbî zakir
Bari bide wî zebani şakir.

— 2 —

TADADI NÎMETŞIMARÎ Û TEKRARI ŞIKIRGIZARIYA BARÎ DI SÛRETÊ AYÎNEDARÎ Û PERDEBERDARIYA PERWERDIGARÎ DA DIGEL IXTITAMA BI MINACATEKI MIXTESERI KURDÎ.

Ey şikri te cewhera zebanî
Wey zikri te seyqela cenani
Ey wahidi bêşerik û yekta
Wey wacidi bênezîr û hemta
Ey baqiyî bêzewal û daim
Wey hadiyî bêfena û qaim
Ey xaliqi erd û asimanan
Wey xaliqi cimle ins û canan
Milk û melek û felek bi carek
Bilcimle te çêkirin tebarek
Sibhaneke kul-lema xeleqte
Ehsente fe keyfe ma feleqte
Herçî ko te çêkir ey nikûkar
Heryek di hedê xwe de sezawar
Ev ne sedef in di pir mirarî
Dir-ri di sefid şefaf û tarî
Heft in di misali dir-ri xeltan
Her şeş cihet û çihar erkan
Her sê weledê di pir mewalid
Xebra û sema digel meqalîd
Lewh û qelem û sewabit û erş
Heywan û nebat û maden û ferş
Zahir kirin evqeder senayih

Peyda kirin evqeder bedayih
Heryek ji edem kirin te peyda
Ibdah kirin te bê heyûla [2]
Filcimle`çi ew-wel û çi axir
Elqis-se çi mûmin û çi kafir
Heryek ji te ra we bûnê mezher
Ewreng di wan tu bûyî mizmer
Bê hisin te nine wan wicûdek
Bê nûr te nîne wan nimûdek
Hikmet ew e batini û zahir
Qudret ew e ẍaibî û hazir
Nînin te tecez-zî û temek-kin
Em-ma we [3] di wan diki tewet-tin
Goya hemî cismek in tu can i
Goya hemi şehrek in tu xan i
Hisna te ye zîneta hebîban
Rişka te ye ẍêreta reqîban
Meyla te ye aşiqan dikêşit
Derdê te ye, dil ji ber diêşit
Şirîn te kire şekir li Perwîz
Ferhad ji rengi eşki xûnrîz
Leyla te kire bela li Qêsê
Ramîn bi te ram bû li Wêsê
Yûsif te çira nima Zilêxa
Wamiq te kusa ginande Ezra
Şêxî wekû pence hec bijarî
Dîn kir te ji bo keça kufarî
Nîloferê nazperwerî kir
Ew jî te li mihri mişteri kir
Balayi bilind te daye ser wan
Pabendi bela te da tezerwan
Sorgul te kirin ji xar peyda
Bilbil te kirin hezar şeyda
Xweşrengî te da giyayê sorgul
Xweşdengi te da newayê bilbil
Ronahî te da serê şemalan
Perwane kirin bi şewqê talan
Mehbûb te çêkirin di dilkeş
Meczûb te pê kirin mişew-weş
Ev eşq û mihbeta di dil da
Ev zilfi selasil di mil da
Aya ne [4] te çêkirin miqabil
Heryek te bi hev kirin miadil
Ayîne te çêkirin miqabil
Ayîne te çêkirin miker-rer
Hisna xwe di wan te kir misew-wer
Ayine li pêş tûtiyan girt
Davek te li pêş koviyan girt
Ayîne ji wan we ye ko av e
Ew eks ji wan we ye ko tav e
Neqşê te dibînin ew di avê
Nakin hezerê ji av û davê
Lebteşne teleb dikin zelalî
Wî dane û dam û zilf û xalî

Meqsûd ko bû ji pêş ve hazir
Dê qesd bikin cemli nazir
Tûtî bi xwe ma şekir dirêjin
Herçi dibihin [5] ewî dibêjin
Wê meqsedê mixteser dibînin
Pabend dibin gelek dimînin
Meqsûd û miradî dil tu şa yî
Em-ma tu « tedel-lû men teşa i » [6]
Herçi te divê bibî delalî [7]
Pabend dikî bi zilf û xalî
Herçi ko tu binî ser hidayet
Vê ra bikirî bikî inayet
Hazir wî dibî meqamî malûm
Ger xadim e wî digêrî mexdûm
Bê secde te ey cenabi mabûd
Adem kire qiblegah û mescûd
Îsa te kusa gihande ew can
Aya bi çi te hebande ew can
Dersa ko bi xef te gote Idris
Elbet diçû meqamî teqdîs
Iblîsi feqîrê bê cinayet
Hindê te hebû digel inayet
Her roj dikir hezar taet
Lewra ko te da wî istitaet
Wî secde ne kir li ẍeyrî mabûd
Gêra [8] te ji ber derê xwe merdûd
Yek secde ne bir li pêş exyar
Qehra te kire mixel-lidin-nar
Elqis-se ji hikmeta te agah
Ferdek mi ne di tebarekal-lah
Irfani teleb di sahib idrak
Der heq-qi te gote ma erefnak
Xanî bi nizaniya xwe der ĥeq
Gumrah bibit ne dûr e elĥeq
Il-la ko meger mitn Xuda bit
Ya rahberê wî Mistefa bit
Yareb bi ĥeq-qi mistefa kî
Xanî bi xwe re tu aşina ki [9]

[1] Işaret li ayeteke Quranê ye. Wê ayetê gotiye:

وانما أمره اذا أراد شيئاً أن يقول له كن فيكون

[2] Mexsed ji heyûlayê nimûne ye. Yanî, ji Xwedê re, te her tiştên tebîetê bê nimûne afirandine

[3] Di vî şikilî de manakirina misrehê zehmet e. Lê heke ev « me » « tu » biwa hingê mana eşkere ye. Mana ew e ko tu di wan de rûdinî, yani cihê Xwedê nîne an ew ne nas e, lê Xwedê di herkesî de ye. Min nikarî bû ez vê misrehê bi « we » yê mana bikim. Heke hinên din karî kerem bikin û ji me re bidin zanîn.

[4] Heke ji bo weznê « ne » avêtiye pêşiyê; dikarî bû bibêje:

Aya te ne çêkirin miqal.

Ji ber ve yekê heye ko di liberniwîsandinê de « te » û « ne » pêş û paş bûne.

## SIKALAY POR Û KEW

Ewa por û kew lêk hatine ziban
Be gileyî kirdin li halê kurdan
Por be kew elê: « Ey kurd teblet !
Li her çî hawrêt exête zillet ?
Boç bo bêgane tu xot emrênî ?
Be qesbe qesb bo çi exwênî ?
Ewan be sire ehêniye bin dor ?
Rawçî nûstiwe tu ey key huşyar.
Be demaxî xoy miştiyan lê egiri.
Be brîndarî seriyan ebirî.
Le ciyatî ewe bo yan bikey şin
Xöniyan emji eley aferîn !
Ya li meydana beqin exwênin
Ke têkiş ber bûn yektir eşkênin
Xozge em halem lê ehû hali
Mêşkim lem ilme ne debû xalî !
Kew: « Pore kiçanî wale kinaçe
Em qewme êsta bûn dese paçe;
Bê wan diral û germiyan û köstan
Êstaş diyare dewrey Kerîm-Xan.
Emeş le kewi kurdan xulqawin.
Wek ewan ejin her çend fewtawin
Ger xundewarî tarîx ezanî
Kirdeweyî ême be baş ezanî;
Be eqil biwaye xelkî Ewrûpa;
Her gîz ney edî teyare û bomba.
Ême bilên çi le kirdeyî Yezdan
Hîç kes be koşiş nagate kurdan. »

BENGÎNE

---

[5] Yanî herçi ko dibihîsin.

[6] اما توتضل من تشائي

[7] Ne delaliya kurdmancî; lê bi dadê nevînî û xirabiya erebî. Me dikarî bû em wê bi « z » yê binivîsinin; lê hingê dibu « zelalî » û jê maneke din bi der diket. Bi tîpên erebî:

هرجی ته دفی بی ضلالي

[8] Ji « gêra » mexsek « kirin » e. Yanî te ew ji ber derê xwe kiriye merdûd. Ji xwe berî 12 misrehan Xanî dîsa şûna kirinê bi « gêran » ê emel kiriye û gotiye:

Ger xadim e, wî digêrî mexdûm.

Yanî heke ew xadim e tu wî dikî mexdûm.

[9] Herçî şairên kevin in bi minacatekê dest bi esera xwe kirine. Ew minacat hemî kêm û zêde weke hev in. Lê minacata Xanî di celebê xwe de yekta û tekane ye. Nemaze tiştên ko di heqê Iblîs de gotiye yekcar negotî û nebihîstî ne. Xanî ji Xwedê dipirse û dibêje; ma te çire Iblîs ji dîwana xwe bi der kir; bi min be tu sûcê wî nine. Ewî ji mabûd pê ve perestişî tu kesî ne kir.

Xanî mideki, welê dide zanîn ko heq di destê Iblîs de ye. Ji ber ko secde xweserî Yezdan e. Ji lewre Iblîs secde li pêş Adem ne biriye. Lê paşê Xanî xwe dispêre hîkmeta Xwedê û jê dixwaze wê hikmetê jê re eşkere bike. An ne, Xanî ditirse ko heke gelek da eqlê xwe, û Xwedê rêberiya wî ne kir; riya xwe dê winda bike.

*Belê Mihemed Mistefa, pêxemberê Xwedê riya rast şanî daye. Lê Xanî di wê rê de jî ne xatircam e; dixwaze ko Xwedê bi xwe, xwe jê re eşkere bikit. Xufrana di ser rehmetê re li Can û giyanê te Xanî......

# MASIVANÊN

## DIHÎ TORPÎLÇÎNÊN ÎRO

Xelkê Britanyayê wek her xelkê girav û peravan gelek meyla xwe didin masîvaniyê. Masîvanî di nav wî xelkê de sinheteke millî tête hesêb. Nemaze gundiyên peravan hesêb bi masîvaniyê dijîn. Beriya vî şerî li Britanyayê qederê 27000 masîvan hebûn. Ev masîvanên ha îro, ji rû û ji biniya behirê, ji masiyan bêtir torpîlan digirin.

Mesele holê çêbû. Eleman li riyên behirê yên ko ji Etlentîk û Pesîfîkê têne Ingilterê torpîl direşînin. Eleman van torpîlan ji jor de bi balafiran berdidin jêr. Ev torpîl li behirê belav dibin û qedereki dikevin binê avê. Gava vapor di ser wan re diborin bi têlên ko li rûyê avê diminin ew dertên rû, li vaporan dikevin, diteqin û wan bin av dikin.

Di vî şerî de selametiya riyên bihirê ji bo ingilîzan gelek bi ehmiyet e. Ji ber ko her tiştên Ingilterê ji derve û di riyên behirê re tên. Wek her stolê di stola ingilîzî de ji vaporên topilçîn hebûn. Lê eleman ewçend torpîlan direşînin behirê ko ew vapor ji bo rakirina wan têr nakin.

Herçî vaporên masîvanan rexma şerî derdiketin behirê û bi işê xwe mijûl dibûn. Lê ji ber ko ew vaporine dijmin bûn balafirên elemanî ew didan ber bombeyên xwe û ew dixeriqandin. Ji lewre ev vaporên bêçek hew dikarî bûn derkevin behirê. Hikûmetê bi miwafeqeta xwediyan ew vapor bi çek kirin û li wan top û mitrelyozên balafirşiken û topeke ji bo noqaran danîn. Bi vî awayî vaporên masîvaniyê hûne cenkeştî. Piştî ko ev vapor bi çek bûn wezîfeke nû li ser xwe girtine: Çinîna torpîlan.

Ev işekî zehmet û bi talûke ye. Lê masîvanên dihî bi şehrazayî bi karê xwe ê nû radibin.

Herwekî me got torpîlên ko eleman ji jor de tavêjin, xwe di bin avê de vedişêrin. Îcar rabûn li vaporên masîvaniyê cihazek siwar kirin. Têlîne wê cihazê berdidin kûrahiya behirê. Ev têl têlên torpîlan ber bi xwe ve dikişînin û wan ditinin der, rûyê avê. Gava torpîl xuya kirin masîvan bi tifing an mitrelyozan bera wan didin û wan diteqînin.

CEMÎLÊ TACDO

# REWŞA DINYAYÊ

ŞERÊ ÛRIS — Di dawiya Gulan û di pêşiya Hizêranê de ûris û elemanan, xwe kêm û zêde lev da. Lê dibêjin hêj êrişa mezin, êrişa Biharê dest pê nê kiriye.

Elemanan piştî ko Kerç bi şûn de vegerand û ûris jê derêxist di Gulanê de dest bi herketeke nû ne kir. Lê herçî ûris beriya ko îşê Kerçê safî bibe, di mintiqa Xerkovê de, li 13ê Gulanê dest bi êrişê kiriye. Li gora pisporên eskerî armanca ûrisan xerabkirina plana elemanên û bişûndevegerandina Xerkovê bû. Ûrisan bi qewetine mezin û zirehpûs dirêjî Xerkovê kir. Eleman qederê heftekê di midafeḧê de man û li 19ê Gulanê rabûn berhicûmê. Ev şer heta dawiya Gulanê dom kir û her du aliyan got; me zora ê din bir. Herçî ûris in, wan Xerkov bi şûn de venegerand. Lê elemanan jî tu erdê nû venegirt.

Elemanan li 29ê Gulanê danezanek belav kir û got ko şerê Xerkovê bi şikestina ûrisan xelas bûye û di vi şerî de 240000 hêsîr ketine destê elemanan.

Li 31ê Gulanê ûrisan jî ji Kwibişefê danezanek belav kir û tê de got ko elemanan êrîşa xwe nikarî bû bibe serî û hicûma elemanî peşiliye. Danezanê digot ko xesara elemanan kuştî, birindar û hêsîr 94000 peya ne. Ji ûrisan 5000 kuştî 70000 hêsîr hene.

Bi vî awayî, şerê Xerkovê, bêî ko yekî ji her du aliyan tişteki heja bi ser de bêxe, qediya.

Di nivgirava Krîmê de ji Kerçê pê ve Sevestepol jî di destê ûrisan de ye. Ji xwe elemanan par ji Sevestepol ne standi bû. Sevestepol bendereke gelek bi ehemiyet û wargeheki stola Behira-reş e. Par elemanan dor lê girti bû û ûris tê de mehsûr ma bûn. Sevestepol jî biketa dest êdî di erdê Krîmê de eskerên ûris ne diman. Ji milê din stola rûsî bi Sevestepolê wargeheki hêja ji ji dest dida.

Li 6ê Hizêranê elemanan bi çêkên xwe ên hewayî û bi eskerên bejê dirêji Sevestepolê kir. Balafir û topçiyan qederê çar rojan li tabiyên keleḧê da û di derekê de xetên rûsî şkênandin. Lê ûrisan ew der pine kir û li ber êrişa elemanan sekinîn. Îşê ûrisan di Sevestepolê de zehmet e. Ji her ko keleh di mihaserê de ye û jê re tu imdad naye.

Ji milê din û li gora radyowa Moskoyê, li 11ê Hizêranê elemanan di mintiqa Xerkovê de ji, ji nû ve rabûne hicûmê.

Herçî eniya bakur, di Lêningard û di gola Îlmenê de herçend şer hinek germ bûye jî; di vê eniyê de hêj tu delêletên êrişê nînin.

ŞERÊ ROAVÊ — Şerê roavê di van rojan de gelek germ bûye. Ji xwe şerê vê eniyê şerê balafiran e. Li 3oê Gulanê bi şev qederê 1250 balafirên ingilizî bi ser bajarê Kôlnê de girtin û qederê 3000 ton bombe berdane bajêr û febrikeyên dorê. Di tarixa şerê balafiran de heta niho tucaran 1250 balafir bi hev re bi ser dijmin de ne girtine.

Elemanan gava Londre bombaran dikir carekê an du caran bi 700-800 balafiran bi ser Londrê de girti bûn; lê tucaran mixdarê balafirên wan ne gihaştî bûn 1250î. Dibêjin ko bajarê Kölnê heséb xerab bûye û xelk jê direvin û diçin bajarine din. Piştî du sê rojan, dîsan qederê 1000 balafirî avêtine ser febrikeyên Krûpê û xesarine mezin gihandine wan febrikan. Ingiliz dibêjin: « ev lê ! lê ! ye, lo ! lo ! hêj li pey e ».

ŞERÊ PESÎFÎKÊ — Piştî ko şerê Birmanyayê safî bû û japon di tixûbên Hindistanê de ji ingilizan veqetiyan ordiwa japonî zora xwe da Çinê û di wilayeta Çêkyangê de dest bi êrişê kir. Japonan di vê wilayatê de du bajarên mezin û girane zemt kirine, Kêniwa û Laçî û êrişa xwe pêş ve birine. Çiniyan li 2ê Hizêranê dane zanin ko di wilayeta Çêkyangê de çar bajar bi şûn de vegerandine. Lê çiniyan ev bajar hêj bi nav ne kirine.

Di Pesifîka navin û di navbera japon û emêrikaniyan de şerekî behrî û hewayî çêbû. Di vî şerî de zora japonan çû û emêrikaniyan tola Pêrherbûrê ji dijminê xwe hilanî.

Di Pesifika navin de giravek heye jê re Midwey dibêjin. Ev girav wargeheki behrî ye û dikeve roavayê giravên Hewayê û mifta wan tête hesêb.

Li 4ê Hizêranê japonan stoleke mezin digel vaporên barkêş şande Midweyê. Di vaporan de eskerên bejê hebûn.

Mexseda japonan vegertina girava Midweyê bû. Balafirên emirîkanî stola japonî beriya ko bigehe dora giravê keşif kir û elam dan stola emêrikanî. Her du stolan û çekên hewayî li hev da. Ev şerê ha qederê 3-4 rojan ajot. Stola japonî şikest û bi şûn de vegeriya. Li gora danezaneke emiraliya emêrikanî xesareke mezin gihaştiye stola japonî Qederê 15 cenkeştiyên japonî bin av bûne an xesar gihaye wan. Di nav vaporên binavbûyî de çar vaporên balafirhilgir hene.

Herçî emêrîkanî ji wan ji vaporeke balafirhilgir bin av bûye, û xesarine sivik gihaştine çend vaporên din.

Piştî vê şikestinê japonan esker derêxiste giravên Eléûten. Ev girav li bakurê Emêrikê ne û ji nivgirava Elaskê wek xetekê ber bi jê r dibin. Elêûten ji hezar û hin giravan bihevketî ye. Lê piraniya giravan xalî ne û xelk tê de nînin. Emîraliya emêrîkanî dibêje ko japonan, nemaze esker derêxiste giravên xalî.

ŞERÊ LÎBYAYÊ — Di qada Libyayê de, piştî ko mideki dirêj her du aliyan bihna xwe da, şer ji nû ve dest pê kir. Romel li 26ê Gulanê dirêji xetên ingilizi kir. Ingilîzan ji berhirê ber bi beriyê, ji Xezalê heta Birhekimê, xeteke midafehê çêkiri bûn û pêşiya vê xetê ji torpîlan tijî kirî bûn. Eleman bi qewetên xwe ên mêkanîkî û zirehpûş ji par re li Birhekimê hate wer. Ji milê din elemanan ji pêşiya xetên ingilizi torpil rakirin û ji qewetên xwe re du riyên teng vekirin û piştre ev her du rê gihandine hev û rêke fireh anine pê. Lê li hire sekinin. Herçî ingiliz in, wan ji ji aliki êrişa elemanan sekinand û ji aliyê din ew ji ketin paşiya elemanan û li riyên ko tê re ji elemanan re çek û cebirxane dihat, dixistin.

Di navbera ingiliz û elemanan de şerine xwîndar çêbûn. Midafeha Birhekimê qewetên Frensa Aza li ser xwe girtî bû. Frensizan bi mêranî û qehremanî şer kir. Frensizên Aza piştî ko 16 rojan li ber dijmineki xurt sekinine xwe dane paş. Ji xwe herçî firqeyên talyanî ne, frensizên aza ew tarimar kirine. Lê ji ber ko cih li wan gelek teng bû bû serfermandariya ingilizi li 12ê Hizêranê emir da eskerên Birhekimê ko jê bikişin. Di tariya şevê de bireki ji frensizên aza xwe da paş û ji Birhekimê xelas bûne. Birhekim bi xwe û birek firensiz ketine destê elemanan.

Piştî Birhekimê şer di dora Harmatê de dom dike

PEYMANEKE NÛ — Mister Îdin wezîrxariciyê Ingilterê da zanin ko Molotov wezîrxariciyê Rûsyê li meha Gulane li Londrê bû û jê çûye Weşingtonê û li 26ê Gulanê, di Londrê de, di navbera ûris û ingilizan de peymanek hate imza kirin.

Ev peyman ji 8 bendan bihevketî ye. Li gora vê peymanê her du alî ji bo şikestina Hitler, ewê bi her awayî arîkariya hev bikin û heta zora elemanan bibin wê şerê wan bikin û tu ji her du aliyan bêt ê din bi elemanan re silh nakin.

Ev peyman piştî şerî ji wê dom bike û ûris û ingilizan her tevdîrê bibînin da ko eleman nikarin ji nû ne serê xwe hildin û dirêji xelkê bikin.

Mideta peymanê bîst sal in

PIRSA ENIYA NÛ — Bi peymana rûsî û ingilîzî ve pirsa enike nû ji nû ve bû girêka gotinê.

Mister Îdin di meclisê de gava qala peymana rûsî û ingilizî kir ji milê din da zanin ko ûris û ingiliz û emêrikanî di vê babetê de yek in û di sala 1942an de, yanî îsal di Ewropeyê de enike nû dê bête danîn. Yanî ingiliz û emêrikanî di Ewropayê de şerê elemanan bikin. Lê bi çi awayî, sondxwarî wê esker derînin beja Ewropayê an bi şerê balafiran wê bes bikin. Bivê nevê ev ne hatiye gotin û nayit ji gotin. Ji ber ko ev ji sirên eskerî ye.

Lê tiştek heye û ev tişt bi darî çavan e. Emêrikanî her û her qewetine nû rêdikin Ingilterê. Heta niho balafir û eskerên bejê hati bûn. Lê vê paşiyê her du hikûmetan da zanin ko stoleke emêrikanî ji gihaştiye Ingilterê. Ev stol ji niho de bi stola ingilîzî hevkariyê dike.

NÛÇEYÊN COL :

Berî çendekê vaporeke hikûmeta Meksikê a petrolkêş hati bû bin av kirin. Li ser vê yekê Meksikê ji japon, talyan û elemanan tezmînat xwest. Dewletên mihwerê guh ne da pêşnihada Meksikê. Meksikê ji ji wan her sê dewletan qutbiriya xwe kir û da zanin ko navbera wan şer e.

Mêksike di Emêrika navin de ye û welatekî fireh e. Nemaze kanên petrolê tê de zehf in.

Ji milê din Emêrike ji bi qerara kongrê da zanin ko nabvera Emêrike Birxaristan, Mecaristan û Romanyayê ji şer e. Di nav hevalbendên Elmanyayê de Fenlandiye jî heye. Rûzwelt got me ji Fenlandiyê re herb îlan ne kir ji ber ko hêj me imid heye ko em Fenlanddiyayê ji elemanan veqetinin.

Şam : 15 Hizêran 1942 NÊREVAN

# PROVERBES

## DIVERS:

1 — Her warek biharek e.
Nouveau camp, nouveau printemps.

2 — Berxê nêr li ber du maka ye.
Le bélier suffit à deux brebis.

3 — Bextê nêr kerê jî dike nêr.
Chance mâle fait de l'ânesse un âne.
(C'est à dire: bonne chance permet l'impossible).

4 — Stirî navbeyna goşt û neynûk de cih digirit.
L'épine s'est introduite entre la chair et l'ongle.
( Se dit d'un parasite ).

5 — Dê û dotê şer dikir, kêmaqila bawer dikir.
La mère et la fille se sont chamaillées; les imbéciles s'y ont laissés prendre.

6 — Mirov zêrê xwe di sûka ceh de nafiroşe.
On ne vend pas son or au marché à l'orge.

7 — Du hespê nêr li ser alifkî nabin.
Deux étalons ne peuvent paitre ensemble.

8 — Masî ji serê xwe genî dibe.
C'est la tête du poisson qui se gâte d'abord.

9 — Mêrê çê li navê xwe lê.
Le brave vient à l'appel de son nom.
( Même sens que le proverbe français: quand on parle du loup, il sort du bois ).

10 — Mirov bi zimanê xwe tê girêdan.
On se lie avec sa langue.

11 — Mirov xwîndar bit, kerdar nebit.
Il vaut mieux avoir une vengence à poursuivre que des dettes à payer.

12 — Mû bi mû, rihek çêbibe.
Poil par poil, on arrive à faire une barbe.

13 — Şev radizin, dijmin ranazin.
Les nuits dorment, mais les ennemis ne dorment pas.

14 — Gurî dimirin, porsor dibin.
Les teigneux morts, il deviennent roux.
( On ne dit que du bien des morts ).

15 — Ava hêdî hêdî me ecêb jê dî.
L'eau qui dort, nous en vimes mervellle.

16 — Kevroşka mê û nêr, mirovê xurt dizane.
Seuls les puissants peuvent dire si le lièvre est mâle ou femelle.
( On ne contredit jamais plus fort que soi ).

17 — Nanê sêlê durû ye.
Le pain cuit sur le « sêl » est à deux faces.
( Le « sêl » est une plaque de métal que l'on fait chauffer et sur laquelle en colle de minces feuilles de pâte pour la cuisson. Le pain ainsi obtenu a deux faces semblables. Ce proverbe s'applique aux hypocrites ).

18 — Wextê leglegê çû bi leqleqê.
La cigogne a passé son temps à claquer du bec.
( Se dit de quelqu'un qui se livre à des occupations futiles ).

19 — Heta Xwedê li me pirsî, kefenê me rizî.
Quand Dieu s'enquit de notre sort, notre linceul était déjà pourri.

20 — Ma te rih li ber tava hêvê spî kiriye.
Tu as blanchi ta barbe au clair de lune.
( Se dit à un rêveur, à un inutile ).

21 — Mirov biçûkê biran nebê, seyê gundan bê.
Plutôt que cadet, chien de village.

22 — Aş çû, emê li çeqçeqokê bipirsin?
Le moulin est perdu, chercherons-nous le traquet ?

23 — Berf û baran dahat, rêç winda kir.
Neige et pluie sont tombées, effaçant la sente.

24 — Berû da bizinê, û dest avête qemçikê.
Il donne un gland à sa chèvre et lui tâte aussitôt la queue (pour voir si elle a engraissé ).

25 — Berxê çê ji ber kozikê xuya ye.
Bon bélier se reconnait dès le seuil du bercail.

26 — Bi berxîtî têr şîr ne xwar, bi kavirtî têr giya ne xwar.
Chevrette, elle ne téta pas à sa faim, chèvre, elle ne brouta jamais assez.

27 — Bila ez xwerê şêran bim, û ne nêçîra çeqel û roviyan bim.
Que je serve de pâture aux lions, et non de proie aux chacals et aux renards.

28 — Ji giya nermtir nîne, di bin keviran da namîne.
Rien n'est plus faible que l'herbe, pourtant. elle ne reste pas sous les pierres.
( Les faibles eux-mêmes parviennent à secouer e joug de l'oppression ).

29 — Bi lavlavê mirov ji ber jina xwe nake der.
Ce n'est pas avec des prières que l'on gouverne sa femme.

30 — Çiyayên bilind bê berf nabin, newalên kûr bê av nabin.

Jl n'y a ni hautes montagnes sans neige, ni vallées profondes sans eau.
( C'est à dire : les grands doivent toujours subir des épreuves ).

31 — Dar, behra wî li bihuştê heye.
Le bâton a sa récompense au paradis.
( Même sens que le poverbe français: qui aime bien châtie bien )

32 — Dar dikeve, berî bi kû da?
L'arbre s'abat, où tombera-t-il ?
( On ne peut prévoir les conséquences d'un acte )..

33 — Darê bi tenê mîna mêrê li ber hikmê jinê, darê dido agirê Kodo, darê sisê agirê tisê, darê pênc û şeş agir dike xweş.
Une bûche solitaire est pareille à un homme soumis à une femme; deux bûches, c'est le feu de Kodo; trois, un feu mesquin; cinq ou six font une belle flamme.

34 — Darê zorê ji bihuştê hatiye.
Le bâton de la violence vient du paradis ( cf. No 31 ).

35 — Dest destan dişo, vedigere ruyan dişo.
Une main lave l'autre, les deux, le visage.
( C'est à dire : l'union fait la force )

36 — Destê bi tenê, deng jê nayê.
Main isolée ne peut applaudir.
( Cf. No 35 ).

37 — Di koşa min de rûniştiye, bi riya min dileyize.
Il est assis sur mes genoux et joue aec ma barbe.
( Se dit d'un jeune homme prétentieux ).

38 — Riya dûr çêtir e ji tirba kûr.
Longue route vaut mieux que tombeau profond.
( C'est à dire: les entreprises dangereuses sont préférables à l'inaction ).

39 — Bilûra ber ga ye, çira ber kora ye.
C'est jouer de la flute aux boeufs, et donner une chandelle aux aveugles.

40 — Bira bira ye, bazar cida ye.
Un frère est un frère, mais les affaires sont les affaires.

41 — Bira di li bi dilî bî, tûrê parsê li mili bi.
Que deux cœurs s'aiment, tant pis si les épaules portent la besace de la mendicité.

42 — Bizina gurî ji serê kaniyê vedixwe.
La chèvre galeuse boit en haut la source !
( Se dit à propos des gens qui ne savent pas rester à leur place. )

43 — Cer di riya avê de dişkê.
Tant va la cruche à l'eau qu'à la fin elle se casse.

44 — Cê keran şamî dike, mesqel şûran misrî dike, xizanî mêran kotî dike.
L'orge fait d'un baudet un âne de Damas; la meule, d'une mauvaise lame un sabre d' Egypte; la misère, d'un homme un vaurien.
( Les ânes de Damas sont renommés pour leur taille et leur force ).

45 — Çekê mêra nivê kar e.
L'outil fait la moitié du travail.

46 — Çiqa go: « Kew e, » mi go: « Nikilê wî sor e. »
Il avait beau dire: « C'est une perdrix! » Je répondais: « Elle a le bec rouge. »
( S'emploie en parlant d'une discussion inutile. )

47 — Çiya hewceyî çiyê dibe.
Une montagne a besoin d'une autre montagne.
( On a beau être puisant, on ne peut se passer d'aide ).

48 — Diz hebe, şevereş pir in.
Pour peu qu'il y ait des voleurs, les nuits obscures sont nombreuses.
( C'est à dire: qui cherche l'occasion la trouve ).

49 — Giyayê hewşê ji xwediyê malê ra tehl e.
Les herbes qui poussent dans la cour sont amères pour le propriétaire.

50 — Go: « Ev çi ye tu diçînî? » Go: « Wekê heşîn bî, tê bibînî. »
— Que plantes-tu là ? — Une fois poussé, tu le verras!

51 — Golikekî vijoker garanekî dilewitîne.
Un veau foireux salit tout le troupeau.

52 — Gotine gur: « Here berxanl » go: « lingê min têşe. »
On dit au loup: « Va tuer les agneaux ! » Il repondit: « J'ai mal à la patte ! »

53 — Gotine rovî: « Me tu kirî mîrê mirîşka. » Rovî girî û go: « Ez ji siûda xwe ne bawer im. »
On dit au renard: « Nous l'avons fait prince des poules ! » Il repartit en pleurant; « Je n'ose croire à mon bonheur ! »

( A suivre )

TAWÛSPARÊZ

# BINGEHÊN

## GRAMÊRA KURDMANCÎ

BI NAVÊ YEZDANÊ PAK Ê DILOVAN Û MIHIRVAN

## — 15 —

## PRONAVÊN PIRSIYARKÎ

101 — Pronavên pirsiyarkî dikevin komekên pirsiyariyê û li gora pêkhatina komêkê, carina kirar û carina jî bireser in.

102 — Kî-Kê, Çi-Çî. Ev pronavên ha herwekî tête dîtin xwediyê du şikilan in, kirar û bireser; ji lewre nayine tewandin

| KIRAR | BIRESER |
|---|---|
| Kî hat ? | Tu kê dibînî ? |
| Çi hat ? | Tu çî dibînî ? [1] |

Pronavên « kî » û « kê » bi gelemperî û bi tenê kesan û pronavên « çi » û « çî » tiştên mayin û carina û bi awakî nerêrast kesan jî dinimînin. Ji van pronavan bi tenê « çi » carina veqetandekê dibe.

| | |
|---|---|
| Ev kî ye ? | Ev Hevind e. Ev zarokek e. Ev mirovekî min e. |
| Tu kê didînî ? | Ez Hevind dibînim. Ez zarokekî dibînim. Ez mirovekî xwe dibînim. |
| Tu kî yî ? | Ez dergevanê dibistanê me. |
| Ev çi ye ? | Ev kitêb e. Ev çiya ye. Ev xapandin e |
| Tu jî çi yî ? | Ez jî ji xwe re zilamek im. |
| Ev çiyê te ye ? | Ev pismamê min e. |

Çend mîsalên din: Tu bi kê re hatî ? Yê ko hat kî bû ? Ez çi jê bikim ? Ez pê çi bikim ? Kê kî kuşt ? Kî kê dikuje ? Kê got ? Çi dest daye te ? Kê dest daye te ? Te çi xwar ? Tu çi dixwî ? Kê karî kê ? Kî kare kê ? Ev bi çî ye ? Te destê xwe daye çî ?

103 — Kîjik, kîjan. Ev her bu pronav mîna hev in, yanî ciyok in û bêferq ji bo kesan û her tiştên din têne gotin û ji ber ko şikilên wan ên kirar û bireser, cihê cihê nînin, wek navdêran û li gora navdêra ko dinimînin têne tewandin.

| | |
|---|---|
| Kîjik hat ? | Tu kîjikî, kîjikê dibînî ? |
| Kîjan hat ? | Tu kîjanî, kîjanê dibînî ? |
| Kîjik hatin ? | Tu kîjikan dibînî ? |
| Kîjan hatin ? | Tu kîjanan dibînî ? |

Çend mîsalên din: Kîjanî got ? Kîjikan bilgirt ? Te ji Kîjanê re got ? Wê ji kîjikî xwest ? Kîjan rabû ? Tu li kîjanî siwar bûyî ? Kêfa te ji kîjikê re têt ?

ŞANEKA TARÎXÎ — Herwekî ji xwe ber dixuye pronavên « kîjik » û « kîjan » bêjeyîne hevedidanî ne. Divêt ev ji bêjeyên « kî - ji - van - yek » hihevketî bin. Kurdmancan gava ev bêje lihevxist û û jê pronaveke pirsiyarkî anî pê; hinan ji nav van bêjeyan « kî » « ji » û « yek » girtin û ji pronava xwe re şikilê « kîjik »ê dan. Hinên din li şûna « yek »ê « an »a « van »ê girtin û ji pronava xwe re şikilê « kîjan »ê dane.

| | |
|---|---|
| Kî - ji - van - yek | Kîjik |
| Kî - ji - van - yek | Kîjan |

Ji ywe em îro jî dikarin bibêjin; « Tu kê ji van dixwazî ». Lê bi vî şikilî bi tenê mirov têne nimandin.

104 — Çend. Ev pronava ha bi tenê gelejmarê dinimîne: Ev çend in ? Te çend dîtin ? Tu çendan dixwazî ?

Ji ber ko ev pronav bi tenê gelejmarê dinimîne, herwekî di mîsalên jorîn de tête dîtin bi tenê bi tewanga gelejmarê tête tewandin. Ev çend bi xwe carina pronava nebinavkirî ye

105 — Kû. Ev pronav bi tenê ji bo pirsiyariya cih tête gotin: Tu çûyî kû ? Ew li kû bû ? Hon ji kû tên ?

## PRONAVÊN NEBINAVKIRÎ

106 — Pronavên nebinavkirî dikevin şûna navdêrên ko di qisetê de bi awakî mibhem batine şanî kirin. Bi gotinên din ev pronav wan kes, tişt an heywanan dinimînin ko di qisetê de ne binavkirî ne. Ji ber ko van pronavan şikilekî bi tenê heye, gava ew dibin bireser wek navdêran têne tewandin.

Di zimanê kurdmancî de gelek pronavên nebinavkirî hene û li gora pêkhatina komekê û mehcetê; ji bêjeyine têvel; û ji nû ve hinên din jî têne saz kirin.

Ên bingehîn ev in :

107 — Yek. Heryek.

Yek hat. Yekî digot. Yekê digote yekî. Ez yekî dibînim. Min ji yekê re got. Heryekê digot. Heryekê dixwend. Yekî din digot. Yeke din digot.

108 — Tu. Kes.

Min tu ne dît. Kes ne het. Kesî ne got. Ez tiwan nabînim. Tiwan ne xwar.

109 — Tukes. Tutişt.

Tukesî ne got. Tukes nabêje. Tukes ne bat. Ez tukesî nas nakim. Min ji tukesî re ne got. Tutişt nîne. Min tutişt ne dît.

110 — Herkes. Hertişt. Tiştek.

Herkesî digot. Min ji herkesî bihîst. Herkes dibêje. Tiştek ket. Hertişt hazir e. Ji hertiştî bêtir. Tiştek heye. Ez tiştekî dibînim.

[1] Piraniyekê kurdmancan e mezin di pronava « çi » de kurt û dirêjbûna « i » yê derpêş nakin û « çi » û « çî » yê bi yek awayî bi lêv dikin. Ji lewre her du jî di şikilê « çi » de dikarin bêne nivîsandin.

# HEDÎSÊN

## CENABÊ PÊXEMBER

REHMET Û SILAVA XWEDÊ LÊ BE

654 — Zanîn û hînbûn ji ibadetê hêjatir e, bi ibadetê mirov nefsa xwe xelas dike, bi zanînê din, milet û welat xelas dibin.

655 — Zanayên we yên ko bi kêri dinyayê nayin li axiretê ji xeyra wan tune.

656 — Rastî, qencî û rûspîkirin e, bi rastiyê mirov digehe mirada xwe, derew rûreşî ye, rûyê xwediyê xwe reş dike û mala wî xirab dike.

Di işê diyanetê de zêde me rin, zêde merin, dîn û diyaneta we jê zererê dibine.

657 — Tîm bala xwe bidin tifing û şûr û xencera û ji destê xwe berra medin, mijûlahiya spehîtir, mijûlahiya silehê ye.

658 — Qenc û mihrivan, comerd û dilrehm bin, xatirê xelkê meşkêninin, qedrê wan bigirin.

659 — Çavê we bila ne li malê xelkê bê, dilê xwe me bijinin bi mal û dewlemendiya xelkê, timakariyê me kin, dewiya wê poşmanî û belengazî ye.

660 — Tiştê hêja ko hon dizanin ji xelkê re jî bidin zanîn, işê xelkê sivik bikin mezin ne kin.

661 — Jina teşîrês ya ko di mala xwe de hiriya xwe dirêse bi qedr û qîmet e.

662 — Zaroyên xwe hînî soberiya avê û nîşana tifingê bikin.

663 — Çaxa dê û bavê we pev re banî we kirin berî werin cem diya xwe.

---

111 — Hin. Hinek.

Hin hatin. Ez hinan dibînim. Hinan got. Min hin dîtin. Hinek hatin. Hinekan got. Ez hinekan dibînim. Hinên din dibêjin. Hinekên din hene.

112 — Filan. Behvan. Filankes. Ev pronavên ha dikevin şûna navên mirovan û li gora mêjer û zayendên wan têne lewandin.

Filan hat, behvan ne hat.

Soro hat, Hevind ne hat.

Filanê digot. Mebêje filan û behvan, yek bi yek binav bike. Filankes çire ne hat?

113 — Ji van pê ve bêjeyên wek yên jêrîn hene ko gelek caran wek pronavên nebinavkirî têne istimal kirin: Çend, çendek, hemî, giş, tev, gelek, heçî - h. d...

( dûmahîk heye ) C. A. Bedir- Xan

954 — Di roja tengayiyê de arîkariya mirova bikin, maldar bi malê xwe, zana bi zanîna xwe, karker bi xwêhdana eniya xwe, pale bi qeweta lep û piyê xwe...

Heke qencî ji we na ye, xirabiyê bi kesî me kin.

665 — Xwedê ji wî mirovî hez dike yê ko hevalên wî dişkên û direvin, lê ew bi xwe ji cihê xwe na lebite, şer û lêxistinê dike û li hember dijmina disekine, an dijmina dişkênine ya rûhê xwe dide

666 — Derman bidin nesaxên xwe, Xwedê derd daye û derman jî daye.

667 — Yê ko serkî dide nesax û birindara parek wî di bihuştê de heye.

668 — Dewlemendê ko li gor demletiya xwe nan û av dide xelkê û arîkariya kêmketiya dike, mîna mirovê ko sê meha digire qedigiran e.

669 — Cil û nivînê xwe, derw û hewşa xwe, gund û bajarên xwe paqij bikin wek cuhiya gemar û rêvin me bin.

670 — Mizgîniya xweşiyê bidin wî camêrê ko bi eyb û kêmaniya xwe mijûl dibe, xelasa nefsa xwe dixwaze hadê li nefsa xwe dike, hewce bû xwe diêşîne û ji ber vê yekê bi qisûr û kêmasiya xelkê mijûl na be.

671 — Dev ji zanîna ko bi kêrî axiret û dinyayê na ye berdin.

672 — Mijûlbûna saetekê li ser zanînê ji nimêj û ibadeta şevekê çêtir e û mijûlbûna rojekê li ser zanînê ji sed mehên rojiyê bi xêrtir e.

673 — arîkariya wî belengazî bikin heya ko heqê xwe ji yê xwe xurt-tir bistîne

674 — Ne bi tenê li mezela mêrên xerîb, heke mezela diya we be jî berî ko hon derbazî hundir bibin li derî bidin.

675 — Li her tiştî Xwedê bi qencî emr kiriye, gava miroveki dikujin an heywanekî şerjêdikin zehmetê me din wan, destê xwe li wan sist bikin, bila bi rahetî can bidin.

676 — Çaxa hon derbaz dibin civatekê silavê li wan bikin û gava hon derdikevin didin ser riya xwe xatir ji wan bixwazin.

677 — Gava hon têne hundirê civatekê û gava hon bi şûn da vedigerin silava bikin û xatir bixwazin.

---


Kiriya Hawarê 500 Qirûşên Sûrî

Xwedî û gerînendeyê bepirsiyar: Mîr Celadet Alî Bedir-Xan . Şam—Sûriye

Directeur Propriétaire: Emir Djéladet Aali Bedir-Khan, Damas-Syrie

SAL 10
HEJMER 46

ÎN
10 TÎRMEH 1942

# HAWAR

ANNEE 10
NUMÉRO 46

VENDREDI
10 JUILLET 1942

KOVARA KURDÎ ★ REVUE KURDE

DI VÊ HEJMARÊ DE



## TEFSÎRA QURANÊ

153 — Gava hon şikiyan û hilkişiyan ser çiya, we baz dida û li dora xwe ne dinihêrt, pêxemberê Xuda peyayên di wî di dora wî de, banî we dikir, we guh ne dida; bi derbekê dengek rabû û got: Mihemed hate kuştin. Yezdan bi êşa şikênandinê û bi hawara kuştina Bezma Mihemed, hon xistin halekî welê; ta ko hon li ber kuştina hevalên xwe û talanê ko ji destê we çû mekevin û xemdar nebin; Xwedê emelên we dizane.

154 — Pişti vê êş û zarînê, ji bo rahetî û ewlebûna we, Xuda xeweke sivik bi ser we de anî, dilê we rahet bû û pê şidiya. Lê ji we birekî dın diket derdê halê xwe û weke mirovên dema nezaniyê zen dikirin ko Xwedê ne heq e, û ji xwe re digotin, îşê bezma Mihemed naçe serî û jê re digotin: Ma ji emr û mizgîniya nisreta Xwedê para me heye an ne? Pêxemberê min, bêje wan: Her tişt bi emrê Yezdan çêdibe. Pêxemberê min... Tiştin hene ko we di dilê xwe de vedişêrin lê ji te re nabêjin, herwekî gava ew dûrî te ne dibêjin: Heke li gora gotina Mihemed, Xuda û nisreta wî bi me re biwa, em ne dihatin şikestin û hevalê me, ne dihatin kuştin. Pêxeberê min... Bêje wan: Divê hon bizanin... Heçî ji we ko Xwedê bi mirina wan emir kiriye, di mala xwe de rûniştî bûna jî, bivê nevê, ew li gora emrê Xwedê ji mala xwe wê derketana û di meydana şerî de wê bihatana kuştin.

Emrê Xuda ew bû, da ko nependiyên dilê we aşikare bibin, û dilpak û fitnekar ji hev cihê bibin û dilê we ji destê Iblisê waswas bifilite. Xuda veşartiyên dilê we nas dike.

155 — Di roja şerê Ihidê de, yên ko hatine şikestin keti bûn dawa Şeytên, dest ji parastina asêgehê berdan û xwe da bûn pey talanê.

Lê Yezdan ji kerema xwe di gunehên wan borî, ji ber ko Xuda ji tobedaran re tobe dide, Xuda delal û dilnerm e.

156 — Gelî bawermendino.... Me bin mîna kafirên ko di heqê mirovên di xwe de ko di riya ticaretê de, di welatê xerîbiyê de dimirin an di riya Xwedê da tên kuştin dibêjin:

Heke ew li cem me, di Medînê de biwana, mirin dest bi wan ne dikir û ew ne dihatin kuştin. Hicrana gotina wan ew e ko; Xuda dil dike wan biceribîne û biêşîne. Yê ko mirovan vedijîne û dimirîne Xuda ye. Xuda bînayê emelê we ye; û her tişê ko hon dikin ew wî dibîne.

157 — Ji we re, kuştina we di riya Xwedê da an mirina we di xaniyê xwe de û efiw û piyariya Xuda; ji zêr û malê wan kafiran ko ew dicivînin, bê şik çêtir e.

# CASÛSÊ

## KO DAN BER TIFINGAN

General Yablonskî, generalekî Rûsya kevin, Rûsya çaran, vê paşiyê ji rojnamevanekî emêrîkanî re kirdeya jêrîn e xerîb gotiye û bi ser ve zêde kiriye ko tê de tu xilaf nîne û mirovdewletên wî zemanî jî pê dizanin. Yablonskî dibêje:

— Ji kepîtên Taname ne biwa me şerê 1904an winda ne dikir. Me ew şer winda ne kira bolşêvîki di welatê ûris de ranedibû û îro me jî çarek wê hebiwa.

Di şerê 1904an de em şikestin û japonan zora me bir. Bi vê şikestinê di welatê ûris de fikirên ixtilalê dest pê kir. Lê heke Tanane ne biwa me ew şer winda ne dikir û xelk li çariyê ranedibû.

Taname di sala 1901ê de hati bû Pêtrêsbûrgê. Di sefareta japonî de wezîfa wî hebû; zabitê irtibatê. Taname xortekî bejinbilind û stûr bû. Bejineke welê ko di nav japonan de kêm peyda dibe. Mêrik kirêt lê devkenok û cazibeder bû. Ji lewre jinan kêfa xwe jê re tanî.

Hingê, ez jî kepîtên bûm û di îstixbarata ordiwê de dixebitîm. Me gelek guh dida Tanamê. Ji ber ko zabitê irtibatê bû; yanî casûsê dewleta xwe.

Taname ji maleke kevin bû. Bavê wî yek ji mişteşarên Mîkado, yanî imperatorê japonan bû. Taname gelek di welatên xeriban de ger:ya bû û bi hemî rêzik û adêtên civatan dizanî û ji lewre zûka bi xelkê re dost dibû.

Me gelek guh dida Tanamê; ji ber ko me dizanî ko dûr û nîzing emê şerê dewleta wî bikin. Ji milê din zabitê me yê ko li Tokyoyê bû ji me re dida zanîn ko hin sirên me ên eskerî, digihan erkanherbiya japonan. Bivê nevê Taname dikarî bû ji me re bibêje ev sir çawan digihaştin Tokyoyê.

Taname gelek pere serf dikirin. Bi qumarê dileyîst û hergav winda dikir. Du hevalên min ên zabit hebûn ko pê re dileyîstin û her û her jê dixwarin.

Salekê me da pey Tanamê; lê me tu tişt tê ne anî der. Herçî raporên sefareta me ya Tokyoyê digot ko sirên me ên eskerî tim û tim digehin erkanherbiya japonan.

Me kir ne kir me tu tevdîr ji Tanamê re ne dît. Dawiyê me qerara xwe da em wî mecbûr bikin û bi xwe terka Petresbûrgê bide. Me digot heye ko yê ko bête şûna wî jê kêmtir bibe. Me dizanî ko Tanamê eleqayek bi artisteke heye: Îlinskaye. Ez çûm cem Îlinskayê û min jê re mesele got. Berî ewilî jinikê pê qail ne bû. Welê dixuya ko heji Tanamê dikir. Min ew firsand û Îlinskayê soza xwe da me ko Tanamê mecbûr bike ji Petrêsbûrgê rabe.

Wê şevê Îlinskaye çû nik Tanamê û jê xwest ko wê mehir bike. Taname ji vê xwestinê gelek aciz bû û ji artistê re da zanîn ko li welêt jina wî heye û zabitên japonî nikarin jinên biyanî bînin. Îlinskayê jê re got: Ji te re 24 saet mihlet, heke te ez ne kirim ezê rezaleteke mezin bînim serê te.

Dîtira rojê Taname ji bo îşekî mihim ez ezimandi bûm mala xwe. Ez çûm. Gava em bi darî hev ketin Tanamê gote min:

— Tê bihîsî, eceba ko Îlinskayê dixwaza bîne serê naşı.

Min xwe danî nezaniyê û min kir ko

# DÎWANA MELÊ

— 29 —

Ahî ji derdê dil dikit herçî kî dî azari çerx
Derban li nêva dil didit lamî' sifet nûbari çerx
Tên sineyan peykan nehîn amanci wan tîran ew in
Dama belayê der kemin her koşe dora mari çerx
Bîra xwe tînin xunceyan aşiq di nêv işkenceyan
Tavête dil ber penceyan herdem ji nû şenqari çerx
J'kûvan letîf in gul'izar lew tên ji bilbil ah û zar
Şûna gulan restine xar nav çîmenan gulzari çerx
Sed baziyani hiq-qebaz têtin bi hîle kari saz
Geh geh bi naz û geh niyaz seh-har e pir mek-kari çerx
Herçî bixwînit sihhetê axir di cama şerbetê
Zehra hilahil didit-ê dil daima azari çerx
Ev er-reya jehrê didan min jî di dil da bin sinan
Ma behri ferqê dijminan bêt û birêt minşari çerx
Dijmin ji can talan bitin ew xweher û nalan bitin
Mêlaki dil kalan bitin lê bêt û red xed-dari çerx
Da kuhnexana misli dêr çendin kewakib têne sêr
Pêkan bi davê şihhi teyr her jê dibarin nari çerx
Şemsî bi şemsê cam bi cam het-ta dikin dewrê temam
Ateş direjît her midam ev kunbeti dew-wari çerx
Agir bi avê gil diket qelban ji qelban hil diket
Misqeb di can û dil diket daîm nevînî kari çerx
Çendî di xûban in rezîm min jî di dil danin gezîm
Amanci wan remzan ez im sereskerê sey-yari çerx
Min pir şevan het-ta seher danîne rê sem' û beser
Ew mahrû ma bête der ta bûme nobetdari çerx
Kes di li lewhi sîne qet neqşek vehatî bê xelet
Herdem ji nû yek taze xet tavête der pergari çerx
Me j'hesreta şirînleban xew nîne çehvan qet şevan
Feryad ji destê kewkeban pirsê bike j'bidari cerx
Van rehrewên hîm-methilind berdane meydanê semend
Serkeşte yin het-ta bi çend ev rekbi meş'eldari çerx
Gavek ji dengî z. gilan eymen çi nînin menzilan
Hey bey bû bendê mehmelan feryad e her qentarî çerx
Pir min ji vê çerxê Mela kêşane afali bela
Ebleh dibînin wey hela herçî ji dil bit hari çerx.

ez bi tu tişti nizanim. Tanamê gotina xwe pêş ve bir û bi ser ve zêde kir û got:

— Tu dizani ko bavê min ji misteşarên Mikado ye û mala me maleke gelek kevin e. Heke li Tokyoyê bate bibîstin ko min elaqe bi artistekê heye ev ji ho rûmeta mala me rezaleteke giran e. Belê heke ev tişt hate bihîstin ne ez ne bavê xwe ne ji mamên xwe em nikarin biminin. Ezê ji Petrêsbûrgê berim. Lê Îlenskaye min ditirsine û dibêje ko heke min ew terikand û ez çûm welelê xwe ewê min caris bike û xelkê min bi minasebeta me bihesîne Heger Îlenskayê tehdîda xwe bire serî bavê min wê intihar bike û şerefa mala me wê payimal bibe. Êdi tu dizani; ez di bextê te de me, divêt tu arikariya min bikî. Çi şertên te hebin ji ji niho de min ew qebûl in.

Min jê re got ko ezê bi serek û hevelên xwe bişêwirin. Ez ji nik Tanamê kêfxweş derkelim û çûm daîrê û min mesele ji hevalên xwe re got. Tev de keniyan û li min vegeradin:

— Taname henekê xwe bi me dike. Qey ji bona ko ji rezaletiya artistekê xelas bibe ewê di eleyhê welatê xwe casûsiyê bike.

Kumandan Oblenof got: mexseda wî eşkere ye. Taname dixwaze, bi vê hêncetê ji me re planine derewin bişine û me bixapîne. Digel vê hindê ev planên derewîn ji bi kêri me tên Emê bi wan bikarin bizanin gelo erkanherbiya japonî, me di kijan cih û niqtan û bi çi awayi dixwaze bixapine. Ji lewre em jê plana Porartûr û Mençûriya nivro bixwazin.

Me ev fikir tev de ecibaud. Hema wê êvarê min Taname dit û sibetir casûsê me terka Pêtrêsbûrgê da.

∴

Havîna sala 1902an bû Me karê xwe dikir. Êdi tu şik ne ma bû ko dilê japon hebû barê xwe li barê me xe. Me Taname ji bir kiri bû. Lê ewî xwe ani bira me. Di Kanûna wê salê a pêşin de ji-çentê sefareta me ya Tokyoyê zerfek derket. Me zerf vekir, planeke eskerî tê de hebû. Tanamê ew şandi bû. Plana hicûma Porartûrê, planeke fenî û hêja: Cihên ko japonan esker derêxistana; armanca her firqê û her kitkitên êrişê. Em lê hûr bûn û em lê ecêbmayi man. Oblenof got: Xuya ye ko japon di derew û hilan de gelek şebraza ne.

Zabitekî got: Heye ko ev plan rastin e. Me plan avête dolabekê de. Piştî şeş mehan Tanamê ji me re zerfeke din rêkir. Vê carê plana şerê Mençûriya nivro bû. Li gora vê planê armanca ordiwa Mançûriyê Mûkden bû. Me ew ji avêt dolabê. Piştî sê mehan mê ji Tanamê zerfeke din girt. Vê carê ji me re plana çemê Yalo şandi bû. Beriya ko em lê hûr bibin me bihîst ko Tanamê dema ko ji erkanherbiyê planên eskerî didizin hate girtin û bi tihmeta casûsiyê hate bi dar ve kirin. Berî ewilî em bi vê xeherê bawar ne bûn. Lê piştî çend rojan zabitê me ji Tokyoyê ji me re da zanin ko xeber rast e û Tanama hate kuştin. Gelek ne borî rojnaman ji ev xeber belav kir û jû pêve rojnaman da zanin ko bavê wî ji ji ber bênamûsiya kurê xwe intihar kiriye.

Êdi tu şik tê de ne ma bû ko Taname ne derewin, lê rastin bû. Planên ordiwa japonî weke xwe dane bû me. Tavil me ew her sê plan derêxistin û erkanherbiya me planên me li gora wan edilandin.

Di sala 1904an de şer çêbû. Me û japonan bi bev da. Gotinên Tanamê rast bûn; japonan di deverên ko wî şanî me dan dirêjî me kirin. Lê di her derê de em şikestin. Ne ji ber ko qewetên me kêm bûn. Lê ji ber ko me qewetên xwe danî bûn cihine welê ko ji niqteyên êrişên japonan gelek dûr bûn û ji me re wext ne dima ko em wan qewetan bînin cihên ko lê gerek bûn. Ma japonan, planên xwe, piştî ko bi xiyaneta Tanamê hesiya bûn guharti bûn ?...

Min cihaba vê pirsiyariyê peyda kir; lê dereng. Ez bi xwe di eniya şer de bûm. Çend zabitên japonî keti bûn destê me. Me ji wan pirsî heke Tanamê nas dikin. Wan zabitan gote min: ma li Japonyayê kes heye ko Tanamê nas nake, ew qehremanekî millî ye. Imperator mala wi bi nişana rojê mikafat kiriye.

Min got: Hingê ne bate îdam kirin, herweki di wextê xwe de rojnaman nivîsî ?

Wan got: Belê bi tehmeta casûsiyê hate îdam kirin. Lê piştî ko şer dest pê kir hate seh kirin ko Taname ne casûs lê canfedekî millî bû. Lê ev tevdîr ji we re diti bû, xwe bi kuştin da bû da ko hon baweriya xwe bi planên wi binin. Bavê wi ji intihar kir; ev ji rast e.

∴

Çiroka general Yablonskî û biserhatiya Tanamê ev e. Di biserbatiya vî zabitê japonî de ibreteke mezin heye. Belê Tanamê di xizmeta welatê xwe de ne bi tenê canê xwe, lê canê bavê xwe ji feda kiriye.

SILÊMANÊ FERHO

# MEMOZÎNA EHMEDÊ XANÎ

## — 3 —

### DI NATA QELEMI MESNÛAT Û SERDEFTERI MEWCÛDAT Û EQIL Û MAQÛLAT Û PÊŞDESTÊ [1] MEXLÛQAT HEZRETÊ SEY-YIDIL-SADAT MIHEMED MISTEFA ELÊH EFZELIS-SELEWAT

Eşya bi beseb delîl û birhan
Nabin çu meger [2] wicûb û imkan
Wacib yek e, zati kibriya ye
Mimkin pir e, cem'i masiwa ye
Wey wacibi mimkinati berqe'
Mimkin wi ji ho xwe kirne metle'
Yani ewê vê [3] bibit mibirhen
Hisna wî biderkevit ji mekmen
Gencinei cewheri bibit faş
Sabit bibitin ji neqş neq-qaş
Lê sinheti wî hekîmê dana
Neqşi ewî qadiri tiwana
Ne dibû ko bibit ewî risûmek
Laiq ewî dê hebit riqûmek
Herçî weko bûne bêreqem bû
Lew ew-weli maxeleq qelem bû
Ev ew-wel û rûh û eqli ew-wel
Her sîne bi ew-weli miew-wel
Em-ma meke wan ji hev tu tefrîq
Evrenge ewan bigire [4] tewfîq
Bê şeyekî wahid in bi carek
Te'dad û te'ed-did îtibarek
Ew-wel biriqî ji hisni sermed
Nûrek bûye maniya Mihemed
Ew nûr bi emri alemil-xeyb
Bû menşei feyzi alema xeyb
Erwah ji maniya peyember
Çêbûn mesela nebat û şek-ker
Bo esli esili cimle nefsan
Nefsa sieda û nefsi nehsan
Hemiyan ji wî ditine tefer-ri'
Hemiyan bi wî girtine temet-ti'
Hêja ne zemîn, ne ev sema bû
Ew serweri cimle enbiya bû
Xelqa felekan ji bo wî rabû
Secda melekan ji bo wî rabû
Ew rehmeti cimle alemin bû
Adem di meyani ma' û tîr bû
Pêxemberi cem'i ciz'i kul bû
Adem bi xwe bêj av û gil bû
Ew pencereya cemali barî
Şemsa feleka dilê di tarî
Gava kete sûreti cihani
Pêxemaberi axiriz-zemanî
Wî berzexi mimkinat û wacib
Wî padişehi li şikli hacib
Mensûx kirin wî dîn û mil-let
Me'lûl kirin elil û il-let
Fikrê ko cihan cem'i kifr e
Kêşa ji nibiw-weta xwe sifre
Xelkê ko hebûn li rûyê erdan
Teklif kirin hemî bi merdan
Xaqan bi xwe hindiwî kemîn bû
Fexfûr ji xwanê kaseçîn bû
Qeyser bi qisûriya xwe qasir
Hazir kiriya bi eyni basir
Şahi erebî elem ko rakir
Kesrayi ecem eceb duta kir
Rûm û hebeş û fireng û tatar
Herçî ko ne kir bi dinî iqrar
Naçar gelek beşir fena bûn
Het-ta ko hinek bi dîn teba bûn
Pitxane bi agiri dişiştin
Ateşgede cimlekî vekuştin
Gava ewî dîn kir aşikara
Dawidi û sibtî û nesara
Tewrat ewan ji bir kir ekser
Incîl û zebûr çûn ji ezber
Îsayî dema dixwende incîl
Behsa wî dikir bo hey û tenzîl
Go mijde didim resûli emced
Dê paş me bê bi navê Ehmed
Dehwa xwe dikir bi dest û idman
Destê wî bi seyf û dev bi quran
Xweşxilqet e, hem resûl e, hem mîr
Pur [5] hikmet e, hem kitab e, [ hem şîr
Naxwende sebeq mider-risi am
Bê mal û menal sahib in'am
Bê xêl û heşem bi xwe cihangîr
Bê tebl û elem cihan seda gîr
Herçî te didî meger her ew bû
Leşker ji cinûd « lem terew » [6] bû
Bê xeyme û barigah û eywan
Ewran vedida li ser wi seywan
Hindê ko ji pêş ve baxeber bû
Ewçend ji pişt ve babeser bû
Sihdan ne diket ji wî li erdan
Vêk ra dibihîst sed xeberdan
Gûyende dibûn digel cemadat
Pûyende dibûn digel nebatat
Yek new' ne ma ji cinsi heywan
Nîna [7] nibiw-weta wi îman
Il-la ko hinek ji ibni adem
Bûn derxwiri ateşi cehen-nem
Elqis-se di erd û asimanan
Hasil di cemi'i ins û canan
Ninin bê şerefeta wî tiştek
Nabit ji wî zêdetir me piştek
Ev bêmededê di im-meta xwe
Mimtaz kirin bi him-meta xwe
Wer'a wi we reng dîn qewî kir
Şer'a wi sirat mistewî kir
Alem hemî şibhi enbiyan e
Abid hemî pêk ve ewliya he
Ferdek ji sehabeyi di kub-bar
Pansed ji dilawerî di kuf-far
Ew cimle digel yekî seraser
Ne dibûn bi mehabetê beraber
Xelkê heye şibheyek di dînî
Behsê bi cedel bikit ji dînî
Quran û xeber çi mi'cizat in
Ayat û siwer çi bey-yinat in
Bûbekr û Emer çi xweş qerîn in
Esmah û Elî eceb guzîn in
Ey padişehê bilindpaye
Xurşid felek-nişîn saye
Ne'ti te bi ilmi min mihal e
Med-dah ji bo te zilcelal e
Ez dê çi bibêjim ey şebinşah
Wes-safi te ye kelamil-lah
Şaha ji te ra xweş-ism e « yasîn »
Taha ji te ra tilism e « tasîn » [8]
Her ev bes e, ey hebîbi mixtar
Bari ji te ra bijite swindxwar
Sed car bijite ey keremkar
Ger dê me hebin guneh du sed bar
Sed mertebe gerçî em xerab în
Em-ma ji te naimîd nabîn
Het-ta bigehête Xaniyê jar
Napak û pelîd û wacibin-nar
Ew jî bi xerabî im-metinî
Dehwa diketin wes-siyînî
Wî bedemelî wekî kilaban
Barî bike peyrewê sehaban [9]

---

[1] Em diqeta xwendevanan li ser vê pirsê, li ser vê dêjeyê dikişînin. Xanî ev bêje, bi xwe, ji bêjeyên « pêş » û « dest » li hevxistiye û aniye pê. Xweş bêje ye, bi mana serwer, bilind û mezin e.

[2] Min ev misreh weke xwe nizanî bû ez bixwînin. Di minhowa erebî de mirov nikare « k » ji « g »yê ferq bikc: Heke me ew « k » hesiband dibe mekir

نابن چومگر وجوب وامكان

[3] Zehmet e. Ev « vê » ji ber çi di vê derê de ketiye navê. Ji bo eşkerekirina ayendê di paşiya « ew » de « ê » yek heye û ew bes e. Ji xwe « wê » ya ayendê yanî istiqbal bi « w »yê ye û ne bi « v » yê ye. Ji lewre me nizanî ev « vê » çi bêje ye û wê li bire çi kar e.

Heke ji bo temamkirine weznê ye, bivê nevê « wê » çêtir bû.

[4] Mirov dikare « bigêre » jî bixwîne.

[5] Farisî ye bi mana tijî ye û ne « pir » a kurdmancî bi mana gelek. Ji lewre me ew bi « u » yê nivisand.

[6] Işaret bal ayeteke quranê ve ye :

فأرسلنا عليهم ريحاً وجنوداً لم تروها

[7] Yanî ne anî. Şikilê kevin: îna, ne îna - nina.

[8] Işaret bi sûretine quranê ve ye:

« يس » û « طس »

[9] Xanî ji Pêxeber daxwaz dike ko wî ji wek seyê eshabên kehfê bigehîne bihuştê. Şairê sorî, Şêx Riza di vê babetê de çarîneke gelek spehî gotiye. Çarin bi xwe bi farisî ye. Eve kurdmanciya wê : Ey pêxemberê Xwedê ! berde ez ji wek seyê eshabên kehfê, bi yarên te re herim bihuştê. Ji xwe çawan dibe ko ew bere bihuştê û ez herim dojehê. Heke ew seyê eshabên kehfê ye; ez seyê eshabên te me.

# REWŞA DINYAYÊ

ŞERÊ MISIRÊ — Hetanî ko şerê Efrîqa bakur di erdê Lîbyayê de çêdibû jê re şerê Lîbyayê digotin. Lê ji roja ko qewetên Romel ketine erdê Misirê ji vî şerî re şerê Misirê dibêjin.

Dema şerê Lîbyayê germ bû û ordiwa ingilîzî a heştan ji çend xetên midafehê xwe das paş û vegeriya erdê Misirê mister Çorçil li Emêrîkê, cem mister Rûzwelt bû. Wextê şikestina Sengeporê jî dîsan Çorçil li Emêrîkê bû. Şikestina Lîbyayê, bivê nevê di Ingilîstanê de endîşeyine kûr û mezin anî bûn pê. Di meclisê de 22 nimînendan teqrîrek dan û ji hikûmetê îzahat xwestin û pê meselа ewlebiya hikûmetê verakirin. Çorçil serekwezîr û wezîrê midafehê ye; yanî her sê wezaretên cengê: herbî, behrî û hewayî di bin emirê wî de ne. Ev nimînende û hinên din dibêjin, ji xwe berê ji hinan got, Çorçil serekwezîrekî pêşdest û serderte ye; lê her du wezîfan yanî serekwezîrî û wezîriya midafehê pev re nikare pêk ve bîne; ji lewre divêt Çorçil ji wezareta midafehê istifa bikit, li şûnê yekî din tayîn bikit û bi xwe bi serek wezîriyê bes bikit. Herçî Çorçil vê pêşnihadê qebûl nakit û dibêjit, hetanî ko ez serekwezîr im divêt wezareta midafehê di destê min de bimîmit, an ne ez ji serekwezîriyê ji xwe didim paş. Lê miletê ingiliz nikare ji Çorçil bigere. Ji ber ko ew bi xurtiya vên û dilê xwe di wextine gelek teng de dilqewînî da miletê xwe û ew ji sisti û newmidiyê xelas kiriye.

Emê di van stûnan de berî ewilî qala nitqa Çorçil bikin û paşê kirdeyên şerê Libya û Misirê bibêjin. Li 2ê Tîrmehê, Çorçil piştî ko çavên xwe li şerên Lîbyayê ên borî gerand, qala hezîmeta îro kir û got:

— Ne ez, ne milet, ne hikûmet, ne erkenherbiyê bawar ne dikir ko Tobriq di rojekê de bikeve destê dijminan. Serfermandar Okinlêk bi xwe ji ev tişt ne tanî bîra xwe. Berî bi rojekê Okinlêk telêgrafek şandi bû Londrê û tê de goti bû ko li Tobriqê eskerine kafî hişti bûn û bi texmîn wan eskeran wê bikariya 90 rojî berevaniya Tobriqê bike.

Ez hingê li Emêrîkê bûm. Li 21ê Hizêranê gava diketim oda mister Rûzwelt û li ketina Tobriqê serwext bûm qey banê qesra reîscimhûr keti bû serê min. Digel vê hindê me mizakereyên xwe bi Rûzwelt re pêş ve bir û nemaze meseleyên jêrîn me gihande qerarê: Çûn û hatina esker, vapor û balafiran di navbera Emêrîkê û di welatê me de. Têvdirên gerek ji bo vaporên me yên ko bi destê dijmin têne binav kirin û çêkirina vaporên nû.

Serekwezîr dîsa vegeriya ser pirsa şerê Misirê û got:

— Hin hene ko hikûmetê itham dikin û dibêjin ko me tiştên lazim di wext û zemanî de rênekirine welatên rohelatê nizing. Lê ne welê ye. Di nav du salên paşîn de me çek û eskerên jêrîn şandine welatên rohelatê nizing: 950 000 esker, 4500 tang, 6000 balafir, 5000 top, 50 000 mitralyoz, 100 000 kemyon Di vê navê de me 2000 tang ji rêkirine welatê ûris.

Çorçil, di pey re da zanin ko beriya êrişa elemanan ji general Okinlek re gotî bû ko kumanda ordiwa heşhan, rast bi rast bêxe destê xwe. Lê Okinlêk pê qail ne bû bû û fermandariya wê ordiinê di destên general Riçi de hişti bû. Lê pişti şikestinê û ji 26ê Hizêranê ve Okinlêk kumande bire destê xwe. Serekwezîr gotina xwe pêş vę bir û got:

— Di Lîbyayê de me karê xwe kiri bû û Romel dest bi êrişê ne kira Okinlêk bi xwe wê dirêji Romel bikira. Min got ko me karê xwe kiri bû. Belê roja ko Romel dirêjî me kir qewetên ber du aliyan bi vî terzî bûn: Bi Romel re 90 000 esker hebûn( 50 000 elemanî, 40 000 talyanî ) eskerên me 100 000 bûn. Berberî 5 tangên mihwerê me 7 tang û li berberî 5 topên elemanî û talyanî me 8 top hebûn. Di hewan de em li dijminê xwe serdest bûn. Lê xesarine mezin gihaştine ordiwa me. Heta niho me 50 000 peya winda kirine; pirê wan hêsir çûne. Li 21ê Hizêranê di eniya Bîrbaşim de, serê sibehê 300 tangên me keti bûn qada şer. Êvarê ji vî sê sed tangî, bi tenê 70 tang vegeriyane warê xwe.

Lê şerê Lîbye û Misirê hêj xelas ne bûye. Me ewlehiya xwe da general Okinlêk û em bawer in ko Okinlêk sezayî vê ewlehiyê ye.

Ji milê din serekwezîr da zanîn ko ev şeş meh in, her meh 50 000 esker di riya behirê re, nivroyê Efrîqayê, Pozê Imîdê li xwe ba didin, tên dikevin ordiwa ingilîzî.

Çorçil beriya ko gotara xwe biqedîne, careke din da zanîn ko rexma van hezîmetan û binavbûna vaporan Ingiltere û hevalbendên wê dê bigehin zefera paşîn.

Meclisê çepilk li serekwezîrê xwe li hev xistin û bikumeta Çorçil bi 475 dengan ewlehiya meclisê stand. 25 dengên mixalif.

Eve gotare Mister Çorçil a bêja. Em bên niho ser qada şer.

Piştî ko asêgeha Birhekîm an Birhaşim kete destê elemanan rewşa şerê Lîbyayê gelek guhêrî. Ordiwa ingilizî a heştan terka xeta Xezale-Birhekîm da û kişiya heta tixûbên Misirê. Bi tenê fermandarê ingilizî Riçî qederê 25-30000 esker li Tobriqê hişt da ko Tobriq ew bendera mihim weke par di destê ingilizan û di paşiya Ordiwa Romel de bimîne û bi vî awayî birekî ordiwa mihwerê di dora Tobriqê de bisekinîne.

Giraniya ordiwa heştan ji behirê ber bi çolê li ser xeta Selûm, Kepûçû û Sidî Emer cih bû û li hêviya dijminê xwe ma. Lê Romel vê carê mîna berê ne kir. Beriya ko îşê Tobriqê safî bike ber bi pêş ne çû. Pêşdarên ordiwa wî gihaştî hûn heta pêşiya Bardiyayê. Li 20ê Hizêranê Romel ew pêşdar ji ji pêşiya Bardiyayê bi şûn de vegerand û ji rohelê, roavê û ji nîvro dirêjî Tobriqê kir.

Ingilizan Zivistanê pê de Tobriq asê kiri bû. Herwekî Çorçil gotiye hêvikc mezin bebû ko Tobriq çend mehan li ber êrîşa eskerên mihwerê bisekine. Lê ev hêvî ne çû serî. Keleh ji 24 saetan bêtir nikarî bû li ber êrîşa dijmin bisekine. Eskerê Rome li 21ê Hizêranê keleha Tobriqê bi temamî zemt kir û mixdarek hêsîr, çek û cebirxane ket destê wan. Romel piştî ketina Tobriqê qet ne sekinî û da pey dijminê xwe da ko jê re fîrsende xwe pêkanîn û xwesazkirinê nedit. Ingilîzan Berdiye midafehe ne kir û dev jê berda. Eskerên mihwerê li 24ê Hizêranê gihaştî bûn pêşiya xeta Selûm Sidî Emer û direjî wê kiri bûn. Piştî şerekî warqilandinê general Riçî eskerên xwe ji vê xetê ji kişand, xwe da paş û vegeriya heta Mersîmetrûh. Ji ber ko Riçî dîtî bû ko eskerên wî ji bo midafeha vê xetê hindik bûn û heke li hire şer bikira wê bihata şikestin. Riçî dev ji Sidî-Beranî ji berda; ji ber ko dijmin dikir lê bihata wer. Li 25ê Hizêranê eskerên mihwerê ketin Selûm, Kepûço û Helfayê. Dimdarên ordiwa ingilizî dijmin diwarqiland û giraniya ordiwê li Mersîmetrûh cih dibû.

Di vê navê de serfermandar Okinlêk kumanda ordiwa heştan ji general Riçî standi bû û xisti bû destê xwe. Okinlêk dît ko midafeha xeta Mersîmetrûh jî bi qewetên herdest zehmet e. Ji milê din Romel dikir li baskê ordiwa ingilizan ê çepê bide û ji par re bikeve pişta xetên ingilizî. Okinlêk li ber vê weziyetê terka Mersîmetrûh jî da û ordiwa xwe kişand heta xeta Elemeyn û Qetarê. Ordiwên mihwerê li 30ê Hizêranê ketin Mersîmetrûhê jî. Romel bê etlahî dida pey ordiwa ingilizî. Dimdarên Okinlêk li pêşiya eskerên Romel disekinîn û ew diwarqilandin. Di vê navê de Okinlêk ordiwa xwe saz dikir û imdada ingilizan gihaşte qada şer. Di vê xetê yanî di xeta Elemeyn û Qetarê de Okinlêk baskê xwe ê rastê da bû behirê û baskê xwe ê çepê da bû Qetarê. Qetare gerek e, ji behirê 50 kilomêtir nizimtir. Hundirê gerê tehl û zinar in. Havînê ew zinar welê disincirin ko mirov tê re nikare here; Zivistanê jî av lê tijî dibe. Ji ber vê yekê baskê ingilizan ê çepê bi vê gerê ji talûka têwerhatinê xelas dibû. Ji milê din dirêjahiya vê xetê ji 50-60 kilomêtir e. Ji lewra jî midafeha wê ji xetên berdayî û bêpivan gelek bêsanîtir e.

Okinlêk eskerên xwe tê de cih kir û li hêviya dijminê xwe ma. Romel bi qewetên xwe ên mêkaniki li 2ê Tirmehê gihaşte pêşiya xeta Elemeynê û dirêjî wê kir. Di êrîşa pêşin de herçend Romel di deverekê de ew xet jî qelaştî be jî ingilîzan ew bi şûn de vegerand û di vê xetê de asê bûn û jê ne tebitin. Piştre ingiliz rabûn berhicûman û hin kozikên elemanan zemt kirin.

Ji çarê mehê ve Romel dev ji êrîşê berda û teşebis ket destê ingilizan û wan çend caran dirêjî xetên Romel kir. Lê heta 10ê mehê her du aliyan xwe gelek tev ne da û kerkes cihê xwe de ma. Li gora nûçeyên paşin ingilizan qewetine mezin anîne vê qadê. Herhal di van rojan de divêt şerê Lîbyayê ji nû ve germ bibit. Bi vê êriş û pêşveçûna ordiwên mihwerê Misir keti bû ber talûkeke mezin. Lê Okinlêk bi tabiya xwe a paşin ev talûke da derbas kirin.

ŞERÊ ÛRIS — Bi şerê Lîbyayê re şerê ûris jî germ bû. Îşê Sevestepolê di hefta vê mehê a pêşin de safî bû û eleman ketin-ê. Lê ûris di Sevestepolê de şerekî ecêb kirin. Herwekî stranê gotiye: ( Bostê lawê bava bi lire be ). Midafihên Sevetepolê piştî ko bêgav man û terka tabyayên bajêr ên derve dan û ketin hundirê kehelê ev telêgraf ji Stalin re rêkirin: « Emê heta mirov û berikê paşin şerê xwe bikin. Lê heke dijmin kete hundirê kelehê em ji te hêvî dikin emir bidî topçiyên me ko topên me li kelehê girêbidin û me ji digel dijmin bikujin. Ev mirin ji me re ji jiyinê bi rûmetir e ».

Bi vî awayî elemanan nivgirava Kirimê bi temamî xiste destê xwe.

Êdî tu şik tê de ne ma ko êrîşa elemanan a mezin, ya ko diviya bû li Biharê dest pê bike, dest pê kiriye û xesereke mezin gihaştiye ûrisan. Ordiwa Timoşenko ji ber elemanan kişiya û eleman gihaştine Çemê Don û lê derbas bûne.

Ji yekê Tîrmehê ve nûçeyên ûris û elemanî dida zanîn ko elemanan ji navbera Kûrsk û Xerkovê dest bi êrîşê kirine û di hemla pêşin de êrîşa elemanan şanî xurtiya xwe da. Di navbera ûris û elemanan de şerine xwindar çêbûn. Ûris bêgav man û xetên xwe ji dest dan û di nav pênc şeş rojan de ordiwa elemanî gihaşte çemê Don, lê derbas bû û kete bajarê Voronêjê. Bi vê pêşveçûna elemanan rewşa ûrisan gelek xerab bû. Ji ber ko Voronêj li ser riya rêhesina Mosko û Rostovê ye û boriyên petrolê jî tê re diborin. Ji milê din çemê Don ji ûrisan re bi qasî çend asêgehan hêja bû.

Ûris bi xwe lê mikur tên û dibêjin ko rewşa wan xeternak e û elemanan qewetine mezin li ava Don derbas kirine û lê pirin çêkirine,

Radyowa Moskoyê li 8ê mehê digot weziyet xeternak be jî ûris di şerê Don de ji desthilanînê ne ketine û nakevin jî. Ji milê din danezana rûsî dide zanîn ko ordiwa ûrisan rabûye ber hicûmê û li her du baskên ordiwa elemanî dide.

Eleman di aliyê Kelêninê de jî rabûne hicûmê û li gora danezanên rûsî di wê eniyê de jî şerine mezin çêdibin û di yek rojekê de gundek an girek çend caran ji destê ûrisan dikeve destê elemanan û ûris wî dîsa bi şûn de vedigerînin.

ŞERÊ ROAVÉ — Li roavê şerê balafiran dom dike. Balafirên ingilizî bi sedan di ser Manşê re derbas dibin û li bejêr û febrikeyên elemanî û li yên ko di bin hikimê elemanan de ne didin. Vê paşiyê ingilizan di mideta hefteké de sê caran li Brêmênê xistine û xesarine mezin gihandine bajêr û febrikan.

Şam 10 Tîrmeh 1942 NÊREVAN

# HEDÎSÊN
## CENABÊ PÊXEMBER

REHMET Û SILAVA XWEDÊ LÊ BE

678 — Ezê ji we re tiştê ko ji nimêj, rojî û sedeqê bi xêrtir e rê we bidim? Lihevanîna du mirovan ji wan çêtir e; tevlokî asasê din û milet xera dike.

679 — Mirovê ko gava qenciyê dike bi qenciya xwe dilxweş dibe û gava xirabiyê dike dilteng dibe, bi xirabiya xwe dilxweş nabe miroveki pak û bawermend e.

680 — Heke tu hinî zanîneke bûyî, divê ji xelkê re bidi zanîn.

681 — Tiştê ko ji te re hate gotin, herweki hatiye gotin ji xelkê re ji wiha qal bike, kêm û zêde meke.

682 — Zanîn winda nabe lê carna zana kêm dibin, ew nezanên ko li cihê zanan rûdinin, işê xwe û yê hevalê xwe tev da şaş dikin, tiştekî jî hev nagerinin.

683 — Malê we pir be hindik be pê arikariya belengaza bikin, yê ko bi tenê ji zêdahiya malê xwe arikariya xelkê dike mina ew peya ye ko piştî ko zikê wî xweş têr dibe xwerinmayiya xwe dide birçiya.

684 — Mirovek hat ba cenabê Pêxember û got: şiretekê li min bike, lê bila kin be ne dirêj be; cenabê Pêxember gote wi: me xeyide, xulqê xwe teng meke!

685 — Paşgotinî ji dan û standina faizê xirabtir e,

686 — Dayende, ango yê ko dide Xwedê ye, ez bi tenê par dikim.

687 — Ji pêş min ve tu cara paşgotiniya xelkê mekin û ji min re mebêjin filan di beqê te de an di heqê filan kesî de tiştekî xerab gotiye: ez dixwazim wadê hon tên cem min bi çavê rehmê li we binêrim.

688 — Nîşanê minafiqa çar in: gava dipeyivin derewa dikin, ko wad dan li wada xwe diqulipin, ne xwediyê gotina xwe ne, gava ji wan re emanetek tê dayîn xainiyê pê re dikin û di doz û dawa xwe de tadayî û neheqiyê dikin.

689 — Di singa we de perçeyek goşt heye, heke ew pak û safî ye her tiştê we qenc e, heke ew xirab e, her tiştê we neçak e; ew perça goşt dil e.

690 — Gava dikin tembî û şîreta li xelkê bikin wexta wê xweş bizanin, wextin hene xelk ji şireta aciz dibin û wextin hene şiret û gotina we diçe heta dilê wan.

# BINGEHÊN
## GRAMÊRA KURDMANCÎ
### — 16 —
### PRONAVÊN XWEMALÎN

114 — Pronavên xwemalîn ew pronav în ko li navdêrên ko dikevin şûna wan işaret û fikireke xwemaliyê bi wan ve dikin. Bi gotinên din ev pronav xwediyên tiştên ko di qisetê de qala wan hate kirin şanî didin. Ev pronavên ha ji du pronavên têvel têne pê; ji pronaveke işarkî û ji pronaveke din, bi gelemperî pronaveke kesîn.

115 — Yekejmar. Yekejmara vê pronavê li gora zayendê tiştê ko mirov xwediyê wî ye bi pronavên qersene « yê » û « ya » têtê pê û pronavên din didin pey.

| ÊN NÊR | ÊN MÊ |
|---|---|
| yê min, xwe | ya min, xwe |
| yê te, xwe | ya te, xwe |
| yê vî, vê, wî, wê | ya vî, vê, wî, wê |
| yê me, xwe | ya me, xwe |
| yê we, xwe | ya we xwe |
| yê van, wan | ya van, wan |

116 Gelejmer. Gelejmara vê pronavê bi pronava qersene « yên » dest pê dike û pronavên din didin pey.

ÇELEJMARA HER DU ZAYENDAN

| | |
|---|---|
| yên min, xwe | yên me, xwe |
| yên te, xwe | yên we, xwe |
| yên vî, vê, wî, wê | yên van, wan |

117 — Herwekî têtê ditin ev pronavên hevedidanî bi her birekî xwe, di qisetê de wezîfeyine têvel dibinin. Birên pêşin yanî pronavên işarki en qersene, şanî wan tiştan dikin ko me qala wan kirine û em xwediyê wan in. Herçi birên paşîn, pronavên ko dane pey wan şanî kes yanî xwediyan didin. Ji ber vê yekê pronavên pêşîn ji mêjer û zeyendê tiştan û pronavên paşin ji mêjer û zayendê xwediyan têne bijartin.

| | | | |
|---|---|---|---|
| destmala min | ya min | destmalên min | yên min |
| gopalê min | yê min | gopalên min | yên min |

Di kesên seyim de pronavên ko xwediyan şanî didin ji zayend û mêjerê pêve dûr û nizingbûna kesan jî didin zanîn. « vî, vê, van » nizing « wî, wê, wan » dûr. Herçî xwe kerem bikin fedkirin mada: 87

118 — Di zimanê kurdmancî de, ji ên jorin pêve, hin pronavên din ên xwemalîn hene û têne çêkirin ji. Herweki: yê kê, ya tukesî, yên kijanê, ya hinekan, yê filanan h.d.

( dûmahîk heye ) C. A. BEDIR-XAN

# PROVERBES

**54 — Beniştê mêrê pis, çîroka mêrê qenc e.**
Le mastic du lâche, c'est l'histoire du brave.
C'est à dire: le lâche se fait valoir en racontant les exploits du brave ).

55 — Gul bû, baran lê ket, şil bû.
La fleur éclos, la pluie vint et la mouilla.

56 — Gundê bincame tê de, çu cara ava nabit.
Le village qu'habite un hypocrite ne sera jamais prospère

57 — Heçî ne li şer e şêr e.
Qui n'est pas à la guerre est un lion.

58 — Heçî dur e bi nûr e.
Tout ce qui est loin brille.

59 — Heçî li hespê hevalan siwar e, her î peyar e.
Qui monte les chevaux de ses amis va toujours à pied.

60 — Hemi kera bi wişkê majo.
Ne conduis pas tous les ânes de la même manière

61 — Herkes giriyê wi bi miriyê wi tê.
Chacun pleure ses morts.

62 — Her serikî eqilekî.
A chaque tête sa raison.

63 — Hevalê qijikê nikilê wî her di gû de ye.
L'ami de la pie a toujours le bec dans la crotte.

64 — Hêlîna teyrê kor, Xwedê çêdike.
Dieu bâtit le nid de l'oiseau aveugle.

65 — Hirçek li rezekî bi sû hat, wê salê çel kêl mehûj zêde bûn.
Un ours se fâcha avec une vigne. On récolta, cette année-là quarante boisseaux de raisin sec en plus. ( L'ours, brouillé avec la vigne, s'abstint de la visiter et de manger le raisin. )

66 — Ji bona çavekî, dibebînim çiyayekî.
A cause d'une source, j'aime une montagne.

67 — Ji mêra nav dimîne, ji ga çerm.
Les hommes laissent un nom, les boeufs, une peau.

68 — Jin keleh e, mêr girtî ye.
La femme est une citadelle, l'homme, un prisonnier.

69 — Jinikê xewn bi mêrê xwe re didît, keziya xwe li ser yarê xwe kur dikir.
La femme se vit en rêve avec son mari; elle coupait ses cheveux pour son amant.

70 — Jîjo serê xwe di pirça xwe dide, dibê; « ox, çi nerm e »
Le hérisson se frotte la tête sur ses piquants, et dit: « oh! qu'ils sont doux. »( chacun se croit parfait ).

71 — Keçik ziyaret in.
Les jeunes filles sont des lieux de pélerinage.
( C'est à dire: elles sont très entourées ).

72 — Ken ji dilê geş tê, baran ji ewrê reş tê.
Au coeur joyeux le rire, au nuage noir la pluie.

73 — Ker bi gem û hefsar, mêr bi soz û qerar.
L'âne a un mors et un licou, et l'homme, une parole et une promesse.

74 — Ker û şûr, bazara meriyê kor.
Ane et sabre, commerce d'aveugle.

75 — Ko agir bi çiyê ket, ter û hişk tev de dişewitin.
Que la foudre tombe sur la montagne, humide ou sec, tout brûle.
( Le malheur frappe indistinctement tout le monde ).

76 — Ko ecelê mûriyê hat, çeng û perê wê çêdibin.
Lorsque la fourmi se prépare à mourir, il lui pousse des griffes et des ailes.
( Se dit des ambitieux qui causent leur propre perte, en se lançant dans des entreprises au-dessus de leurs forces ).

77 — Ko kela şorbê çû, behayê keskê bi perêk e,
La soupe écumée, l'écumoire ne vaut plue qu'un sou.

78 — Ko ker kete heriyê, xwedî wê rehêje teriyê.
Que l'âne tombe dans la vase, son maître le tirera par la queue.

79 — Kor çito li Xwedê dinêre, Xwedê ji werge lê dinêre.
Comme l'aveugle voit Dieu ainsi Dieu le voit.

80 — Li dîwarî mişk hene, di mişkê de guh hene.
Dans le mur il y a des souris, elles ont des oreilles.

81 — Li kerê mirî digere ko sola wi jê jêke.
Il cherche les ânes morts pour prendre leurs fers.
( Se dit d'un avare ).

82 — Malan mal bar kir, terziyan go: « Derziya me di serê me ra ye. »
Les tentes levaient le camp. des tailleurs dirent: « Nous portons notre aiguille sur la tête.»
( Se dit de pauvres gens dont le bagaje est léger ).

83 — Mala zarok lê de, şeytan naçe tê de.
Maison qui a un enfant, le diable n'y va.

84 — Mala zêra xerab dibit, mala kura xerab nabit.
Maison qui a l'argent pour richesse peut être ruinée, maison qui a des fils pour richesse ne le peut.

85 — Mal mala aşiqa ye, simbêl simbêlê sûbaşî ne.
Sa maison est celle d'un bohémien, ses moustaches, celles d'un soubachi.
( Soubachi: directeur de police; ce proverbe s'applique aux gens qui n'ont rien, mais se donnent grande allure ).

86 — Mastê paiza bidin eziza, şîrê bihara bidin neyara.
Donnez le lait caillé d'automne à qui vous est cher, le lait de printemps, à vos ennemis.
( Le lait de printemps est généralement mauvais ).

( A suivre ) TAWÛSPARÊZ

---

Kiriyriya Hawarê 500 Qirûşên Sûrî

Xwedî û gerînendeyê bepirsiyar: Mîr Celadet Alî Bedir-Xan . Şam—Sûriye

Directeur Propriétaire: Emir Djéladet Aali Bedir-Khan, Damas-Syrie

ŞAM—1942 — ÇAPXANA SEBATÊ

SAL 10
HEJMER 47

ŞEMBÎ
25 TÎRMEH 1942

# HAWAR

ANNÉE 10
NUMÉRO 47

SAMEDI
25 JUILLET 1942

KOVARA KURDÎ ✶ REVUE KURDE

DI VÊ HEJMARÊ DE



## TEFSÎRA QURANÊ

158 — Heke hon mirin an di riya Xwedê da hatine kuştin, honê vegerin ba Xudayê xwe, û ev ji we re xeyr e.

159—Pêxemberê min... Bihinfirehiya te bi wan re, ji kerema Xuda ye; heke te dilê xwe teng bikira û zorê li wan bidaya, ewê ji dora te belav bibûna. Qisûrê wan efiw bike û ji bo wan diayê bike da ko Xwedê tobe bide wan. Gava tu dest bi işekî dikî, bi wan re bişêwire û ko te qerara xwe da, êdî ji Xudayê xwe hêvîdar be, Yezdan, ji hêvîdarên xwe hez dike.

160 — Gava Xuda ji kerema xwe nisretê dide we, êdî kes nikare zora we bibe; heke wî nisret ne da, ji wî pê ve ma kî dikare arîkariya we bike. Ji ber wê yekê divê mirovên bawermend ji Xudayê xwe hêvîdar bibin; kerem û comerdiya wî bixwazin.

161 — Pêxemberê Xuda, tu cara di belavkirina talanê de bêbextiyê nake. Her kesê ko vê bextreşiyê dike, di roja piştdawiyê de wê neheqîtiyê di pêş xwe de dibîne. Her kes li gora emelê xwe tê ceza an mikafat kirin û ji tu kes re neheqîtî naye kirin.

162 — Mirovên ko li gora emrê Xuda dimeşin, ma kengê mîna wan in ko bêbextiyê dikin û Xuda ji wan dixeyidê. Cihê wan dojeh e û dojeh çi ciheki lêr tirs û ezab e.

163 — Cihê mirovên çak, li nik Xuda bilind e. Yezdan emelê zelamên camêr û peyayên bêbext dibîne.

164 — Xuda bi mirovên bawermend re gelek keremkar û comerd bû. Wî, ji wan re ji miletên wan pêxember şandın da ko ew ji wan re ayetên Xuda bixwînin, wan ji gunehên wan paqij bikin û ji wan re kitab û hikmetê bidin zanîn. Berê ew miletên he, nezan bûn û riya xwe şaş kiri bun.

165 — Herçend ji, di şerê Bedirê de ji dijminên we heftê mirov hati bûn kuştin û heftiyên din jî hêsîrên we bû bûn, dema şerê Ihidê de ko ji we heftê zelam hate kuştin, we hema got: Ev çima hat serê me? pêxemberê min, bêje wan: Ev îşe destê we ye, Xwedê ji we standi bû. Xuda bi her tiştî dikare.

166 — Ew tiştên ko di roja şerê Ihidê de qewimîne bi destûra Xuda çêbûne, Xuda dixwest mirovên bawermend nas bike;

167 — Û dixwest ko mirovên durû jî bêne zanîn. Ji wan re dihate gotin: werin di riya Xwedê da dest bi şer û kuştinê bikin.... Werin arîkariya koma şerkeran bikin. Wan digot: Me îşê şerî bizaniya, me arîkariya wan bikira, lê ji xwe ev ne şer e, hon xwe rast bi rast davêjin mirinê. Ne wisa bû... lê ew di wê rojê de ne nîzikî baweriya pak lê cîranên kufrê bûn. Ew tiştên ko ne di dilê wan de ye hema bi zimanê xwe dibêjin. Xwedê tiştên ko ew di dilê xwe de vedişêrin pê dizane.

# EZMÊN

## LI SER SERÊ ME PEYA DIBARANDIN

Ev salek û tiştek e ko elemanan bi siwanvaniyan girava Giritê vegirt. Vê paşiyê yewnanekî ko di vê baranê de şil bûye ji rojnamevanekî ingilîzî re qala şerê Giritê kiriye û gotiye:

— Berî hatina elemanan bi du rojan min terka Etînê da bû û ez bati bûm Giritê. Hikûmet ji hati bû Giritê. Hikûmet di giravê de teşkîlat çêdikir û jê re memûr diviya bûn; lê ew bi dest ne dikitin. Li Etînê ez binek bi îşê haşê mijûl bû bûm. Min xizmetên xwe pêşkeşî hikûmetê kir û min wezîfek girte ser xwe.

Li 20ê Gulanê bi şefeqê ve ez ji Xaniyê rabûm û çûm gundê Kiryoniro. Min bihîstî bû ko di wî gundî de mixdarek zeyt heye. Gava ez gehiştim gund reisê belediyê hêj hişyar ne bû bû. Ez li ber xanekê rûniştim û di sariya sibê de min qehwa xwe vediwar. Rojeke Biharê e spehî bû. Ez keti bûm texmîn û mitalan. Dengê topên balafirşiken yên ko ji Sodayê berdidan ez hişyar kirim. Xwediyê xanê bi erin got: Ma ne şerm e; li Xanyayê didin, ji xelkê sivîl çi dixwazin.

Piştî demekê topan xwe lal kir; lê viz û vingîna balafiran nizing dibû. Gelek ne borî me dengê boriya talûkê bihîst. Xelkê gund di gastîna gund de gihane hev û li ezmên difedkirin. Balafir ref bi ref dihatin. Bi carekê de me dît ji balafirekê çend balafirên din peyda bûn û ew jê veqetiyan. Lê gava me rind bala xwe da me zanî ko ew ne balafir, lê tiştine din in.... belê ew însan bûn, esker bûn, ji balafiran derdiketin û dihatine me. Ew siwanvanî bûn.

Ji berê de ji me re gotî bûn; heye ko dijmin siwanvaniyan berdit ser Giritê. Lê me bawer ne dikir. Êdî me ew bi çevên xwe dîtî bûn.

Jin û kurê min li Xaniyayê bi tenê bûn. Ez ji nav gundiyan derketim û min da rê û ez ketim nav darên zeytûnê. Balafir di ser daran re difirîn û siwanvanî bera erdê didan. Ez tirsiyam ko nekevim destê wan. Ez di vê mitalê de bûm min dît yek kete nizingî min, hema 4-5 gav ji min dûr. Mêrik pê li erdê kir, ne kir çav bi min kir, da tifinga xwe, û bera min da. Destê min birîn bû; min xwe li erdê pehin kir. Dengê timatîk û mitralyozan nav di min dida. Ingilîz û siwanvaniyan rahiştî bûn hev. Gava pitpita mitralyozan bi dûr ket ez ji cihê xwe derketim. Erd ji cendekan tijî bû bû. Min nizingî li cendekên nûzêlandiyan kir. Di cizdanên wan de resimên dê û bav, jin û zorowên wan hebûn. Min li wan temaşa kir û çavên min hêstir kirin. Şer ne tiştekî qenc e. Lê zarowên min..... Min ji nû ve da rê û ez gihaştim Xanyayê Ezmên bê etlahî siwanvani dibarandin Gelekê wan diketin dora balafirgeha Malêmê. Ev balafirgeh ji bajêr dehkîlomêtir dûr bû. Welê xuya dikir ko elemanan dixwest di dora balafirgehê de bigehin hev û jê bikevin bajêr.

Ingiliz û yewnaniyan bi mêranî şer dikir. Lê gelek caran li xwe heyirî diman. Eleman dadiketin her derê. Mifrizekî ingilîzî dema ko şerê tofeke siwanvaniyan dikir, tofeke din diket pişta wan an tenişta wan. Ji lewre wan ne dizanî berî ewilî şerê kê bikin. Ji milê din eleman bi siwanvaniyan re di şikilê eskeran de qirdik ji berdidan erdê. Carina esker diçûn ser qirdikan û siwanvaniyên rastîn ji par re li wan dixistin. Digel vê hindê xwînsariya ingilîzan û mêraniya xelkê Giritê gelek bi kêr hatin. Mêrên kal tifingên xwe ên jengirtî ji bin erdê derdixistin; hin bi tifingên nêçîrê

# DÎWANA MELÊ

— 30 —

Dilberê îro seher avête cerkê min du dox
Yek li sîne, yek li dil da lew ji min tên ax û ox
Ah û oxên min ji dil tên ew ji ber tîra qizil tên
Yan ji kovanên di kul tên jê dizên her xûn û zox
Xûn ji dil co co rewan tê wek eqîq û erxewan tê
Lê ji dest selwa ciwan tê ew şepala şeng û şox
Ew şepala şox û şengê kafira rom û firengê
Da me ber cibtek xedengê zalimê kuştim bi dox
Zalimê kuştim şepalê nazikê qencê delalê
Bûn hicaba zilf û xalê berqe'e ala û tox
Nitrik û tayên bi rîşî yê di zêrîn pê veweşî
Min du fêris dîn di pêşî mirwet û insaf yox
Lew heriftim ez ji meylê şibheti sehl û sihêlê
Mihbet û eşqa delîlê ez kirim yekser pilox
Dest nebêlim ez ji dînê şibhi Ferhad û Şirînê
Dê ji ber eşq û evînê min direçit ev kilox
Sihbeta çerx û sema tê wek Melê sed mibtela tê
Zemzem û ava beyatê miştirî sed şêx û şox

— 31 —

Heyheya reqs û sema tê ya çi xweş bestiye çerx
Ko di bircê bi sema têt û li ser dest çûye berx
Sofiyên ber di tewafê hec-ceril-eswed-de qesd
Gul û sinbil bi sema tên hem-miyan zemzem û çerx
Neqşi elmas ger elmas e lê binî girtiye herf
Xeti yaqût e li yaqût şikênandî qey li nerx
Kerixin em di qiyamê wê ji dil perde dirand
Arifî wextim û me'rûf bila bête ew ji kerx
Da binasî xeterên rê tû nebî xafil jiwî
Dicle ye lê di pir in, berderî pêl in û berx
Pir şiar e di şi'rê de û Mela bû şalfiroş
Lew nişan min mede ferxê ko li nik min bûye ferx.

direjî siwanvaniyan dikir. Jin û zarowan bi ço û keviran bera wan dida. Ji xwe carina eleman beriya ko bigehin erdê bi berikên mitralyozan di hewayê de dihatin kuştin. Te dît çend siwanvanî daketine zeviyekê. Xelk li wan kom dibûn, bi tifing, şejderb, kêr û ço bi wan diketin, ew dikuştin. Bivê nevê ji xelkê jî hin dihatin kuştin.

Heta êvarê esker û ehaliyan şerê siwanvaniyan kir û bi texmîn heçi daketi bûn erdê tev de hati bûn kuştin.

Fermandariya ingilîzî êvarê danezanek belav kir û da zanîn ko ingiliz hakimî weziyetê ne. Lê dawiya barana însên ne dibat û eleman guh ne didan telefatê. Di destê eskerên elemanî de çekine xerîb hebûn. Bi qeweta wan çekan û bi fedakarîne mezin mihaciman zora midafihan bir. Herçî midafih xwe dan peravan, li vaporan siwar bûn, çûn; da ko di deverine din de û ji nû ve şerê dijmin bikin.

XELÎLÊ GENCO

# MEHFÛR

JI « MAURICE BOUCHOR » HATE WERGÈRANDIN

Li wextê berê siltanê Stenbolê, bi xulam û berdevkên xwe ve çû bû welatê kurdan. Kurê wî jî pê re bû. Rojekê ew gihaşti bûn gundekî mezin. Gund bi mêrgine fireh dorgirtî bû. Şenhnedêra wî gundî bû. Xelkê kêf dikir û têciran hûrmûr difirotin. Nemaze mehfûrên spehî, mehfûrên rengereng yên ko di wî welatî de çêdikirin.

Çavê kurê siltên bi keçikeke delal û bedew ket û pê re axaft. Piştî ko dûr û dirêj pê re da û stand kurik gote bavê xwe ko dilê wî heye wê bike jina xwe.

Siltan li kurê xwe vegerand û got: Kurê min vî îşî meke, ma ev keçik kî ye gundike kurd. Min ji te re li Stenbolê keça paşaki hazir kiriye. Di payîtextê me de jê dewlementir paşa nîne.

Kurik bi edeb û terbiye li bavê xwe vedigerand, lê pê li erdê dida û ji keçika kurdmanc ne digeriya. Kurik digot heke divêt ez dikarim ji bo vê keçikê hemî emrê xwe di vî gundî de biborînim. Siltan dît ko ji derdê kurê xwe re ji keçikê pê ve tu derman nîne. Siltan şande pey keçikê û ew anî hafa xwe û jê re got: min qîma xwe bi te anî, ezê te bikim bûka xwe, tu çi dibêji?

Keçikê bi edeb û terbiye, lê bê gur û gef gote siltên: Ezbenî, kurê te çi îş dike?

Siltan hate kerbê û got: Ma tu dîn bûyî keçê, li karê kurê min dipirsî, ma tu nizanî ko ew kurê siltan e...

Keçikê dîsan bi rehetî vegerande siltên û got-ê: Ezbenî ez kurê siltan çi ye nizamînî heke kurê te karek, sinhetek heye ez wî dikim, an ne no!....

Kirin ne kirin keçikê qîma xwe bi mêrekî bêsinhet ne anî. Siltan vegeriya Stenbolê, kurik di gundê kurdmancan de ma û hîni çêkirina mehfûran bû. Piştî ko kurê padişê bû hostekî serdeste, keçik qîma xwe pê anî û tev de çûn Stenbolê. Siltan bi kur û bûka xwe şa bû û daweta wan kir.

*
* *

Rojek ji rojan kurê siltên bihîstî bû ko ji derveyî bajêr di rex pîreke kevin de aşxaneke nû vebûye û tê de xwarinine gelek qenc û tamdar çêdikin. Kurik cilên siltanî ji xwe xistin û ciline têciran li xwe kirin û berê xwe da aşxanê. Gava gihişti-ê xwedî gelek qedrê wî girt û jê re sêniyek xwarin anî. Bi rastî xwarinine qenc bûn. Kurê padişê ji her sehenê pariyek dibir û tam dikir ko erd di bin wî de hejiha û raxera odê digel sêniya xwarinê dakete jêr. Kurik bi careke de dît ketiye zêrzemîneke tarî û ezman hew jê xuya dike. Ji nişkekê ve çar pênc peya bi xenceran pê ketin û dikirin wî bikujin. Kurik xwînsariya xwe winda ne kir û gote wan:

— Zêr û zîvê min hemîn ji we re ye. Lê bi kuştina min çi bi dest we dikeve. Ez ne bi tenê têcirê mehfûran im, lê ez zanim mehfûran ji çêkim. Li şûna ko hon min bikujin, min bi xwedî bikin, ez dikarim ji we re mehfûran çêkim.

Diz pê qail bûn û jê re tevnek vegirtin, hirî û tiştên din ên gerek jî ji kurê padişê re anîn. Bî vî awayî şahzade xêra sinheta xwe ji mirinê xelas bû.

Em bên sereya siltên. Dinya bû êvar û gava kurê siltên venegeriya serayê xulam û berdevk belav bûn çar goşeyên payîtext û lê geriyan. Tukesî şopa wî hilnanî. Li serayê şîna şahzadê girêdan.

Herçî şahzade, di hepsa xwe de şev û roj li mehfûra xwe dixebitî û qet serê xwe ji xebatê ranedikir. Bi tenê carina xew lê giran dibû û saetek an didowan di xew re diçû, qey da bû ser rêkê û dikir rojekê berî rojekê bigehe dawiya riya xwe.

Şahzade, bi vî awayî şeş mehên xwe di hespa dizan de temam kir. Lê di vî midetî de jî mehfûreke mezin û spehî çêkir û ew da destên dizan û gote wan:

— Eve ji we re mehfûreke delal, wê bibin û ji paşakî re bifroşin. Hêj çêtir wê rast bi rast bibin seraya siltên. Siltan gelek hejî mehfûran dike. Mebit ko wê ji sed zêrî kêmtir bifroşin.

Didowan ji dizan cilên têciran wergirtin, mehfûr kirin pişta xwe û ketin kûçe û kolanên bajêr û gihaştin ber seraya padişê û ketin hewşa wê. Siltan gava çav bi mehfûrê kir ew gelek eciband, sed zêr pê dan û ew kiri

Mehfûr raxistin dîwanxanekê de û xelkê serayê lê kom bûn. Keçika kurdmanc, jina şahzadê gava mehfûr dît, di wê de neqş û kulîlkên mehfûrên welatê xwe nas kirin. Keçik li neqşên mehfûrê hûr bûn û bi derbekê de got: « Bi Xwedê ev mehfûr ji welatê min têl, an yê ko ev çêkiriye li ber tevnên welatê min xebitiye ». Çavên keçikê hêstir dikirin. Keçik li her neqş û kulîlkên mehfûrê cihê cihê fedkirî û ji nişkekê ve qîr kir û got: « Werin fedkirın, eve navê wî û ji me re çi dinivîsîne ». Xelkê serayê tev de li cihê ko keçika kurdmanc şanî wan dida nihêrtin û dîtin ko gotina keçikê rast e. Şahzade li nav gulekê navê xwe û cihê ko lê girtî bû nivîsandi bûn.

Bi emirê siltan esker gihane hev û berê xwe dan pira kevın û bi ser şikefta dizan de girtin û deriyê hesinîn yê ko diz tê re dadiketin biniya erdê şkênandin û gihaştin zêrzemîna ko şahzade bi xwe tê de bû. Şahzade li ber tevnê rûniştî, dest bi çêkirina mehfûreke din dikir. Eskeran diz hemî girtin, ew kelemçe kirin û Şahzade derêxistin ber tava rojê. Siltan û bûka wî jî di pey eskeran re gihaştine devê şikeftê. Xelk li wan kom bûn, herkesî xelasbûna şahzadê şahînet dikir. Şahzade jina xwe di himbêza xwe de diguvaşt û digot-ê: Ji ber evîna te ez hînî senhetê bûme û xêra vê sinhetê min xwe ji mirinê xelas kir û dîsan gihaştime te.

Siltan ji nû ve daweta kurê xwe heft şev û heft rojan bi reqs û govendan da şahînet kirin

SILÊMANÊ FERHO

# DÊ AN XÛŞK?

JI « FRANK STOKTEN » HATE WERGERANDIN

Li golekê, xortek dê û xûşka xwe di sendalekê de digerine. Dinê bihar e. Bayekî şêrin li ser rûyê avê ê şin pêlên sivik cêdike û wek dergûşekê sendalê dihejîne. Di bin şirgermiya tavê de kulîlkên doraliyên golê bi giranî hildibin. Wek xanimên çeleng û xemilandî bi pozbilindî li hev dinêrin û ji xwe pêve tu kesî naecibînin

Sendal, bi stran û ken ji peravan dûr dikeve. Xort li dê û xûşka xwe dinêre; ji şa û kêfxweşbûna wan, xwe çiqa bextiyar dizahe û heşmetkar li diya xwe a pîr, lê bin çeleng û narîn û li xûşka xwe a ciwan, şepal û dilber temaşa dike.

Ji nişkave, ji livîna yekê ji wan sendal diqûlibe û her sê ji dikevin avê. Ji xort pêve ne dê ne ji xûşk bi melavaniyê nizanin.

Xort hewar û zarînên wan dibihîse û cigera wî diperite. Her diwan pevre nikare xelas bike; ewê yekê ji wan bibijêre: kî gelo ? Xûşk an dê ?

Ez dikim nakim tu tişt tê dernaxînin
Ka hon jî pê mijûl bibin û hineki xwe biêşînin..

NÛREDÎN ÛSIF

# MEMOZÎNA EHMEDÊ XANÎ

— 4 —

ISTIDAVI ŞEFAST Û ISTIŞFA'I MEXFERET E JI CENABÊ SAHIB SERÎBI ŞEFAET DI SÛRETÊ MÎRACÊ DA BI DAL HEZRETI IZ-ZET

Ey wasiteyi wicûdi kewneyn
Şayesteyi qurbi-qabi qewseyn
Şahinşeh e textigeh Medîne
Mi'ciz ji te ewqeder me dîne
Seyra felekan li nik te gavek
Sexra melekan ji te silavek
Şeq-qilqemera te yek işaret
Eqil-besera te yek ibaret
Ey padişehî serîri lewlak
Sabe here asimanê çalak
Hezir ji te re biraq û refref
Hatin bi te re teriste ref ref
Da refi' bibin ji ber te perde
Bê perde digel Xwedê xeber de
Bêje tu qedîr û zilcelal î
Bêje tu qedim û layezal î
Em fanî û jar û mişti xak in
Hadi ne tu bî xwe em helak in
Ew-wel te ji bo çi da me tazim
Danî li ser me taci tekrîm
Teşrîfi xilafetê te da me
Gava te emanetê xwe da me
Melûmi te bû ko em nezanin
Qedri wê emanetê nizanin
Herçî te ji bo me kir irade
Yek zer-re me lê ne kir ziyade
Haşa ji kemali re'feta te
Dûr e ji celal û rehmeta te
Kufr û gunehan bikî behane
Laîq te bitin eve şehane
Yekrû ne li nik te kufr û iman
Yeskû ne li nik te xuld û neyran
Qehra xwe biki eger tu zahir
Cen-net li me de bibête agir
Wer feyz bikil sehabi rehmet
Dûzex li me dê bibête cen-net
Ger kafir û ger gunahkar in
Bilcimle ji te umîdwar in
Kes nîne ji kafir û isatan
Mezher nebitin ji bo sifatan
Kafir biwîn em bi ismi qeh-har
Xef-far e ko em kirîn gunehkar
Kufrê tu meger neşî bibexşî
Ger dê gunehan bi me ne bexşî
Dê şad bibin li me şeyatîn
Mesrûr bibin gelek melaîn
Qet xeyret e ey penahi alem
Qet laiq e ey şebani adem
Ev gurgi leîni bedserencam
Jêk ra bikelin me şibbi exnam
Elqis-se bikî ko dêwi serkeş
Tenha û tenê biçîte ateş
Bilcimle me cimle xas û aman
Asê û şeqi û natemaman
Têk ra bi şefaeta xwe xas ke
Vêk ra me ji agiri xelas ke.

# REWŞA DINYAYÊ

PIRSA ENIYA NÛ — Ji roja ko êrîşa elemanan dest pê kir û di nîvroyê eniya ûris de ordiwên rûsî bêgav mane û ji ber elemanan kişiyan pirsa eníke nû ji nû ve tête gotin û çapên hevalbendan li ser vê pirsê gelek disekinin. Ji xwe vê paşiyê gava Çorçil çû bû Emêrikê bi Rûzwelt re ev mesele jî hate mizakere kirin û di dawiya mizakerê de her du hikûmetan da bû zanîn ko di sala 1942 an de li Ewropayê enike nû wê bête danin; yanî eskerên ingilîz û yên hevalbendên wî wê dakevin beja Ewropayê û şerê ele manan bikin.

Li 16ê Tîrmehê radyowa Londrê da zanîn ko eskerine kenedî û ingilîzî di dora behira Brîtanyayê de manawrene mezin çêkirine. Ev menawre bi vî awayî çêbûne: Esker li vaporan siwar bûne û ketine behirê' Piştre ev esker di bin himayeta stolê de vegeriyane bejê û dirêjî peravên Brîtanyayê kirin. Di peravan de eskirine din hebûn, heçko ew dijmin bûn. Eskerên ko ji behirê hatine zora wan birine û daketine bejê. Radyowa Londrê gotiye ko menawre bi miwefeqiyeke mezin gihaştiye dawiyê. Vê radyowê bi ser ve zêde kir û got: Eskerên ko ev menawre çêkirine, sibe wê herin û dakevin beja Ewropayê. Çapa yani metbûata sondxwariyan di vê menawrê de delêletên çêkirina eniya nû dibînin. Ev çap bi xwe pê li erdê dide û dıbêje êdî wext e, eniya nû divêt rojekê berî rojekê bête danin.

PIRSA HINDISTANÊ — Herwekî xwendevanên me dizanin di Sibata vê salê de Sir Staford Krîps çû bû Hindistanê û bi navê hikûmeta xwe bi serekên Hindistanê ên milî keti bû mizakeran. Ingiltere dil dikir bi hindiyan re li hev bêt û îşê Hindistanê safî bikit. Ingilterê ji hindiyan re wada istiqlalê dida. Lê ev istiqlal piştî şerî jwê bihata tetbîq kirin û heta dawiya şer Hindistan di bin vegertina ingilîzan a eskerî de wê bimaya. Hindiyan ji ber van sebeban pêşnihada ingilîzan bi şûn de avêt û her tişt weke xwe ma.

Bivê nevê japonan kêfa xwe ji vê qerara hindiyan re gelek anî û hêz da bû propeganda xwe. Lê heta vê dawiyê li Hindistanê sezayî gotinê tu tişt ne qewimî bû.

Vê paşiyê Gandî serekê hindiyan ê bi nav û deng xwe tev de û li 13ê mehê encimana kongrê a icraî qerareke dûr û dirêj belav kir. Di vê qerarê de encimen bi kurtî dibêje: Divêt ingilîz ji Hindistanê rabin û herin. Piştî çûyina ingilîzan li Hindistanê hikûmeteke milî dê bête saz kirin û di vê hikûmetê de ta û qewimên Hindistanê tev de dê bêne nimandin. Ingilîzên ko dil dikin, bi şertê ko wek hindiki bêne hesêb, dikarin li Hindistanê bimînin. Digel vê hindê hindî bi tu awayî naxwazin di warê şer û cidalê de îşê ingilîz û henalbendên wî biwarqilînin. Ji ber vajî ve piştî ko ingilîz ji Hindistanê kişiyan Hindistan wê arîkariya Çînê jî bikit.

Qerara encimenê ev e. Li 7ê Tebaxê kongre wê bigehit hev. Hingê ev qerar ji kongrê re dê bête ber pê kirin. Heke kongre ev qerar tesdîq kir û ingilîz ji Hindistanê ranebûn hingê hindî ji nû ve dest bi grêvina bikin yanî bê şer û çek ewê bixwazin ingilîz aciz bikin.

STOLEKE FRENSÊ — Gaya mitareka frensiz û elemanî çebû, birek ji stola frensizan ya Behira-spî, li Skenderiyê bû. Ingilizan ne hişt ko ev stol ji Skendiriyê rabe û here bendereke din. Emiralê stolê jî qebûl ne kir ko derbasî aliyê Degol bibe. Ji lewre ingilizan stol girt û ew ji çek kir û hikûmeta Ingilterê da zanîn ko keştiyên vê stolê heta dawiya şer li Skenderiyê wê bimînin; stol bi zabit û deryavanên xwe ve li Skenderiyê ma.

Vê paşiyê gava ordiwa Romel ket axa Misirê û rewşa ingilîzan di vê qadê de bû xeternak hikûmeta Vişiyê emir da emiralê stolê û got heke eleman ketine Skenderiyê bila cehda xwe bike ko jê rabe û stolê bigehîne bendereke frensizî. Û heke ev firsend bi dest ne ket weke berê û di bin bandêra frensizi de li Skenderiyê bimînit.

Bivê nevê ingilîz û emêrîkanî pê hesiyan. Li ser vê yekê li 3ê Tirmehê Emêrikê notak daye Vişiyê û jê xwest ko ev stol di Behira-sor û di Behira-hindî re xwe bigehîne bendereke emêrikanî. Vişiyê ev pêşnihad yanî teklîf bi şûn de avêt. Emêrikê pêşnihadike din ji Vişiyê re ber pê kir û got bila stol xwe bigehîne girava Martinîkê. Ev girav mistemlikeke frensizî ye û li Emêrikê ye. Vê paşiyê emêrikaniyan dest daniye ser giravê. Vişiyê ev pêşnihad ji bi şûn de avêt û da zanin ko ev stol ji benderên Frensê pê ve naçit tu deran. Li ser vê yekê Rûzwelt got: Êdî ingilîz işê xwe wê bizanin û heke elemanan nizingi li Skenderiyê kir ingilîz an stola frensizî bi xwe re bibin, an wê bin av bikin; ji xwe binavkirina vê stolê hêsani ye, ji ber ko qameyên topên stolê jê hatine hilanin.

Nimînendevên Vişiyê dibêjin ko heke ingilîzan dirêjî vê stolê kir; stol ewê ii ber xwe bide û beye ko keştîne din bigehin hawara wê.

ŞERÊ ÛRIS — Herçend êrîşa Tîmoşenko ya meha Gulanê, di mintiqa Xerkovê de, êrîşa elemanan bi şûn de hişti be jî ev hicûm ji destpêka Tîrmehê ve bi tevî germî û giraniya xwe dest pê kiriye û piştî çend rojan xuya bû ko armanca elemanan a pêşin Qevqas û bi taybetî petrolên Bakoyê ne.

# AVA DICLÊ

– LI BEXDAYÊ LI BER ŞET HATE GOTIN –

Ava Diclê em dizanin tu ji Kurdistanê tê
Ka selamên wi welatî bê diyarî holê tê
Tu çire hinde melûl i hêdû hêdû ber me tê
Rengê te şeylo û tarî we bê mişmiş teyî tê
Bihn dikim te Ava-Diclê wek kirasê Ûsif tê
Her bi xwina genc û lawan lewma hinde jarî tê
Aava-Diclê tev de xwin i, her ji xwîna kurdî tê
Bin te de hesti kilox in sed hezar ser ser de tê
Nexmeya şina şehîdan pêl bi pêl tê û tê
Ber bi van xortên welatî her bi av û nale tê
Tu li nav asteng û nalan we ji nav palên çiyan tê
Serbejêr i kerbelayê we bo behrê diçi û tê
Ka Cizira mîr Bedir-Xan tu ji nav Birca-belek tê
Ew cihê ewçend bi deng bû îro bê jin û mirî tê
Tu ji nav şêr û pilingan û ji nav axa b'bihn tê.
Her biji tu Ava-Diclê her bi nav û dengî tê

M. E. BOTÎ

Elemanan beriya hicûma mezin — hicûma ko di pêşiya vê mehê de dest pê kir — erd jê re xweş kiriye. Armanca vê erdxweşkirinê birîna rêhesinan bû, yên ko Rostovê bi Moskoyê re girêdidin. Bi vî awayî Qevqas ji imdada ko jê re ji Moskoyê bihata wê mehrûm biwa. Ji ber vê yekê jî yekînekên ordiwa von Bok ji Xerkovê derketin berê xwe dan çemê Donês û piştî şerine dijwar li çem derbas bûne û li 27ê Hizêranê ketine Kûbyanskê. Kûbyansk dikeve nivrorohelê Xerkovê û jê 70 kilometir dûr e. Di Kûbyanskê de çend rêhesin digehin hev.

Herçî yekînekên ordiwa von Kleyst ew jî ji Poltavayê rabûne û berê xwe dan rohelê û li 24ê Hizêranê ketine Îzyomê, bajarek li ser çemê Donês. Bi vî awayî elemanan eniya xwe ber bi rohelê birî bû û ew di hindava Tagenrogê de rast kiri bû.

Li 29ê Hizêranê elemanan ji bakurê Xerkovê, ji hindava Korskê jî rabûne hicûmê û li gora danezanên wan di nav pênc rojan de 250 kilomêtir pêş ve çûne û gihaştine çemê Don. Elemanan li çemê Don jî derbas bûne û li 6ê Tirmehê dane zanîn ko Voronêj ketiye destê wan. Ûrisan derew bi aliyê vê nûçeyê ve da û got ko Voronêj di destê wan de ye. Lê ûrisan mikur hat ko eleman li Don derbas bûne û gihaştine wî milê avê.

Ji milê din eleman ji Biyelgorodê jî rabûne hicûmeke din û jê ve jî qesta Don kirine û berê xwe dane Pavlovskê.. Vê ordiwê di nîvê rê de berê xwe ji rohelê bada, xwe li bakur girt û li 8ê Tîrmehê yekînekên vê ordiwê ketine Starayaroskolê Li 11ê mehê ûrisan da zanîn ko bi hemtê xwe bajarên Kentemîron û Lizîşansk vala kirine û jê kişiyane.

Her du ordiwên elemanî yên ko ji Xerkov û Poltavayê rabû bûn du armanc da bûn ber çavên xwe; li rohelê Stalîngrad û li nîvro Rostov.

Ordiwa ko berê xwe da bû Stalîngradê li 16ê mehê gihaşte Bogûçarê, li ser çemê Don. Ûris jê û ji bajarê Morovdayê jî kişiyan. Elemanan piştî ko ev her du bajar standin bi qewetên xwe ên mêkanîkî dan pey ûrisan û xwe li Stalîngradê girtin. Li 20ê mehê elemanan qederê 100 kilomêtir nizingî li Stalîngradê kir û li hire sekinîn. Welê dixuye ko ûrisan li pêşiya Stalîngradê xeteke midafehê çêkiriye û dilê wan heye li hire pê li erdê bidin û şerê elemanan bikin. Stalîngrad bajarekî mezin û merkezeke sinahî ye. Heke elemanan Stalîngrad — bi navê xwe ê kevin Çariçîn — stand ewê bigehin çemê Volgê, Volga ûrisan a miqedes.

Piştî rêhesinaj Mosko - Rostov, Volga di navbera Qevqas û Rûsya bakur de rêke behrî ye. Volga çemê Ewropayê ê dirêjtir e; 3400 kîlomêtir. Heke eleman girhaştine Volgê ewê tê re dakevin behira Qezwînê û bi vî awayî Rûsya bakûr ji Rûsya nivro yekcar wê qut bibe. Ji lewre divêt ko ûris di pêşiya Stalîngradê de pê li erdê bidin.

Em bên ser ordiwa elemanî ya ko berê xwe da bû nivro û armanca wê vegirtina Rostovê bû. Vê ordiwê, ji ber ko ûris di gelek cihan de bêî ko li ber elemanan bisekinin ji ber dikişiyan, bêetlahî meşiya û li 19-20 Tirmehê li aliyê nîvro ji derbasî çemê Don bû, çem li xwe ba da û ji rohelê berda Rostovê. Ji xwe bireki vê ordiwê ji bakur dadiket Rostovê. Mexseda elemanan li Rostovê wer hatin û girtina midafihên wan bû. Ji xwe par elemanan Rostov vegirtî bû; lê Timoşenko ew bi şûn de vegerandi bû. Ji hingê ve ûrisan Rostov asê kiriye.

Li 24ê Tîrmehê herçend danezanên elemanî zemtkirina Rostovê da bin ji zanîn ûrisan ev nûçe ne beliyand yanî jê re belê ne got û ew tesdîq ne kir. Elemanan li 25ê mehê jî gotine ko Novoçersk jî ketiye destê wan. Lê ûrisan piştî du rojan da zanîn ko ev her du bajar vala kirine û jê rabûne.

Herwekî ji raveka jorîn dixuye elemanan bi çend baskan dirêjî ordiwa Timoşenko kiriye. Jê mexsed xistina vê ordiwê nav çenberê bû. Lê vê carê plana elemanan ne çû serî. Timoşenko di wext û zemanî de xwe da paş. Ji xwe welê dixuye ko Timoşenko jî herwekî Okinlêk li Misirê kiriye, ji bona ko nekeve deravekî teng xwe dide paş hetanî ko ciheki wek Elemeynê peyda bike û li wê derê êrîşa elemanan bisekinîne, xwe pêk bîne û paşê rabe berbicûmê.

Eleman bi vê bicûmê di nav çar heftan de, li ser enîkê 600 kîlometir firef 600 kîlometir pêş ve çûne. Lê herwekî me got elemanan nikarî bû ordiwa Timoşenko bigire. Timoşenko li nîvro xwe da paş. Lê li bakurê eniyê di mintiqa Voronêjê de rabû berhicûmê û piraniya ordiwa elemanî ji milê Don yê rohelê avête roavê û pirên ko elemanan lê çêkiri bûn ew jî xerab kirin û bajar bi temamî xistine destê xwe. Êrîşa ûrisan di mintiqa Voronêjê de dom dike û pisporên eskerî dibêjin ko ev êriş ji bo baskê ordiwa von Bok ê çepê xetereke mezin e.

Herçî elemanan, herwekî me got li nîvro jî di çend deran de li çemê Don derbas bûne û li wî milê avê ketine û xwe ji bo êrîşa Qevqasê kar dikin.

ŞERÊ MISIRÊ — Herwekî me di hejmara 46an de gotî bû fermandarê ingilîzî general Okinlêk kişiya bû heta xeta Eleyemeyn-Qetare, û li hire li pêşiya elemanan sekinî bû û hicûma wan sekinandi bû. Bi vî awayî Okinlêk ji gerokiya Romel re sêncek danî bû û teşebis xisti bû destê xwe.

Okinlêk piştî ko imdadine mezin gihaştine wî û ordiwa xwe saz kir ji 20 heta 25ê mehê du caran dirêjî xetên mihwerê kir û di dirêjahiya eniyê de gir û mitikên hêja xistine destên xwe û eskerên xwe tê de cih kirin. Herçî eleman di midafehê de diman û ji xwe re tabiye û kozik dikolan. Okinlêk ji baskê elemanan yê çepê, yanî ji behirê jî dirêjî xetên mihwerê kir û stolê bi topên xwe ên dûravêj tabiyên wan bombaran kir.

Li gora fikira pisporên eskerî vê carê ingilîz wê rabin hicûmê û ordiwa Romel ji erdê Misirê derînin û wê vegerînin Libyayê. Heye ko heta Trablisxerbê.

ŞERÊ PESÎFÎKÊ — Li Pesîfîkê qey şer sekiniye. Ji tevgera balafirên her du aliyan pê ve hêjayî gotinê tiştek nîne. Li gora nûçeyên ko ji wê eniyê tên sondxwarî xwe kar dikin û vê carê qewetên emêrîkanî û ingilîzî wê rabin hicûmê.

Herçî şerê Çînê, ev şer dom dike û japon zora xwe didin çîniyan.

ŞERÊ ROAVÊ — Li roavê yanî di navbera ingilîz û elemanan de şerê balafiran e. Ingilîz bi refine ji çend balafiran bihevketî diçin ser Elemanyê û Frensa vegertî û erdên din yên ko ~~iro di destê~~ elemanan de ne û li bajarên wan ên sinahî û li wargeh û benderên wan didin.

Şam: 25 Tîrmeh 1942 NÊREVAN

# BINGEHÊN
## GRAMÊRA KURDMANCÎ
## 17 — RENGDÊR

119 — Rengdêr ew bêje ye ko bi navdêrê ve dibe û wesfekî wê dide zanîn; an wê navdêrê di mana wê de tayîn û texsîs dike. Herwekî gava em « hespê reş, hespê beza, hespê xurt » dibêjin « reş, beza, xurt » rengdêr in; ji ber ko ew yek bi yek wesfekî navdêra hêsp didin zanîn. Dîsan di gotinên « ev hesp, çar hesp, kîjan hesp, hin hesp, hespê min » de bêjeyên « ev, çar, kîjan, hin, min » rengdêr in; çûnkî ev ji navdêra hêsp di mana wê ne dîxesisînin û dieyînên.

120 — Ji raveka jorîn dixuye ko rengdêr du cisin in: yên ko navdêran diwesifînin û yên ko mana wan tayîn û texsîs dikin. Ji ên pêşin re rengdêrên wesfîn dibêjin û ew xwerû rengdêr in. Ên mayin di esilên xwe de bêjeyine din in û gava di komekê de bi navdêrê ve dibin, wezîfa rengdêrê dibînin û navdêrên xwe li gora tewangên xwe didin tewandin û gava navdêr ji komekê dikevin û ew bi serên xwe diminin hingê vedigerin esilên xwe.

121 — Di nav navdêran de bi tenê ên wesfîn yên ko xwerû rengdêr û ji bêjeyên neguhêrbar in; gava bi tena xwe ji dimînin nayine tewandin û veqetandekê jî nabin. Lê herwekî di cih û devera wê de dê bête ravekirin vê qeydê jî awerteyin hene.

122 — Di zimanê kurdmancî de şeş texlît rengdêr hene:

1 — Rengdêrên wesfîn
2 — Rengêdêrên işarkî
3 — Rengdêrên jmarin
4 — Rengdêrên pirsiyarkî
5 — Rengdêrên nebinavkirî
6 — Rengdêrên xwemalîn

123 — Ji van rengdêran, ên wesfîn dikevin paşiya navdêran û bi du awan bi wan ve didin. Ên xwemalîn hergav didin pey navderê û veqetandek dikeve navbera wan. Herçî işarkî, pirsiyarkî û ên nebinavkirî dikevin pêşiya navdêran û bêî tu tiştî bi wan ve dibin. Ên jmarin, hinek ji wan dikevin pêşî û hineên din paşiya navdêran.

## RENGDÊRÊN WESFÎN

124 — Rengdêrên wesfîn gava bi navdêran ve dibin wesfekî wan didin zanîn, ango wan diwesifînin.

Wekî niho, bêjeyên « reş, spehî, bibind » rengdêrine wesfîn in; ji ber ko gava bi navdêran ve dibin. wesfekî wan didin zanîn. Herkwekî: « Min hespê reş dît. Ev hespê ha reş e. Ez li ber gola spehî rûnîştî me. Bi min ev gol spehî ye. Felemêz hilkişiya bû ser vê dara bilind. Ev dar gelek bilind e ». Mîna ko ji van mîsalan dixuye rengdêrên wesfîn di komekê de piştî navdêrên xwe peyda dibin û bi du awayên têvel bi wan têne girêdan.

1 — Bi veqetandekê: tifinga qenc, şejderba dagirtî, mehîneke boz, xanîkî nizim, mêrekî baş, mirovine xirab, jinine spehî, destmaleke sor, çêleka doşe. Hingê rengdêr bireserê navdêrê ye.

2 — Bi lêkera bûnê: ev tifing qenc e, ew xanî nizim e, şejderb ne dagirtî ye, hespê min beza ye, mehîna ko hat avis e. Hingê rengdêr pêveberê lêkera bûnê ye.

# HEDÎSÊN
## CENABÊ PÊXEMBER

REHMET Û SILAVA XWEDÊ LÊ BE

691 — Windabûna zanîn û zanaya, pir bûna nezanî û nezana, zehfbûna serxweş û zinakera ji elametên qiyametê ne.

692 — Yê ko pêşnimêj e bila xelkê ji nimêj û ibadeta xwe aciz ne ke, ne pir bike, ne hindik bike, bi can û bên bike; bila bîne bîra xwe ko di cemaetê de nexweşin hene, jarin hene û mirovin henç ko îşê wan bilez e.

693 — Hedîsa qudsî, ango Xwedê li ser zimanê Pêxemberê xwe gotiye: Kelima şehadetê keleha min e; yê ko wê bêje, wê têkeve keleha min û yê ko dikeve keleha min ji ezabê min xelas dibe.

694 — Her rastiyê bibêjin; yên ko ew dibihîsin pê kêxweş dibin an ne, ew ne îşê we ye; xema vî tiştî mexwin.

695 — Ji welatê xwe hez bikin; hejkirina welêt ji imanê tê.

696 — Dilê sêwî û zaroya dilê bêkes û bêçareya xweş bikin. Heke we ev tişt kir hizanin ko Xwedê we dê bigihîne xweşiyê.

697 — Her bixebitin, ji bona we ji xebatê çêtir û hêjatir tu tişt nîne; hon pê dinya û axireta xwe ava dikin.

698 — Berî îş û xebata xwe pêkbînin û piştre dest bi diayê bikin.

699 — Bê destûra Xwedê kes nîkare arîkariya kesekî bike.

700 — Mirov ne bi diaya xelkê lê bi emelê xwe digehe rehm û qenciya Xwedê.

701 — Mirovê ko bi kêrî dinyayê naye, bi kêrî axiretê ji naye.

702 — Nanê xwe ne ji xebata xelkê lê ji keda xwe bixwin.

# PROVERBES

**87—Mezinahiya gund di pehnahiya rê ve xuya ye.**
On reconnait la grandeur du village à la largeur de la route.

88 — Mêr çem e, jin gol e.
L'homme est une rivière, la femme un lac.

89 — Mêr bê xweyî dibin, jar dibin; jin bê xweyî dibin, har dibin.
Homme seul devient faible; femme seule devient chaude.

90 — Min darek avêt kewê, li kewê ne ket, kew li darê ket.
J'ai lancé un bâton sur une perdrix; ce n'est pas le bâton qui est tombé sur la perdrix, mais la perdrix, sur le bâton.

91 — Mirin ne hêjayî şînê ye.
La mort ne vaut pas le deuil.

92— Mirişka birçî di xewna xwe de garis dibîne.
Poule affamée rêv de maïs.

93 — Mirişk avê vedixwe û li Xwedê dimeyizînê.
Poule qui boit regarde vers Dieu.

94 — Mirovê tirsonek her dimire, ê mêr carkê.
Le poltron meurt à chaque instant, le brave, une seule fois.

95 — Mîr dimire, xizan dimîne.
Le prince meurt, le pauvre reste.

96 — Navekî giran di gundekî wêran.
Grand nom dans village en ruine.

97 — Pere xulamekî qenc, lê axakî xirab e.
L'argent est un bon valet, mais un mauvais maître.

98 — Pîvaz çiqas firk bin, serê wan mezin dibin.
Plus les oignons sont espacés, plus ils ont la tête grosse.
( Qui vit retiré se croit un grand personnage ).

99 — Qorîna quling ji derdan e.
La grue crie parce qu'elle a mal.

100 — Rovî di ber mêwê re çû, devê wî ne giha tirîih go: « Tirş e ».
Le renard vint à passer devant un cep, il ne put atteindre les raisins, et dit: « Ils sont aigres ».

101 — Rovî têr e, tirî tirş e.
Le renard n'a pas faim; le raisin est aigre.

102 — Royê kiçik lê herikî ji avê mezin lê sekinî çetir in.
Petit ruisseaux qui coulent valent mieux que grandes eaux qui dorment.

103 — Serê gurî di bin kum de çêtir e.
Mieux vaut que tête teigneuse reste sous le bonnet.

104 — Serê heft newalan newalekê ye, serê heft gotinan gotinekê ye.
A l'origine de sept vallées, il y a une seule vallée, à l'origine de sept paroles, un mot.

105 — Sê gidî hene li dinê, yê li hevraza vedixwe qelûnê, yê mala xwe datîne rex mala bavê jinê, yê bi rê va diçe bi tinê.
Il y a trois fous au monde: celui qui fume la pipe à la montée; celui qui plante sa tente à côté de celle du père de sa maîtresse, celui qui chemine seul.

106 — Si û sê kilamê hirçê ne, li ser dara hirmê ne.
L'ours a trente trois mots à dire, tous au sujet du poirier. (Les ours aiment les poires).

107 — Şeva tarî di êvarê de kifş e.
Nuit sombre s'annonce dès le soir.

108 — Şev yek e, diz hezar.
Il n'y a qu'une nuit, mais mille voleurs.

109 — Şêr dikiuje, rovî dixwe.
C'est le lion qui tue, mais le renard qui mange.

110 — Şêr li zozana dihirmijê, gur li binê beriyê miha berdidê.
Que le lion rugisse sur l'Alpe, le loup poursuivra les brebis dans la plaine.

111 — Şor li mirdaran, sipî li qirpalan.
Aux lâches les insultes, aux haillons les poux.

112 — Tajiyê Mihê koro herdidanê kîroşka, diçû qijika.
Le lévrier de Mehé koro, on le lachait sur les lièvres, il poursuivait les pies.

113 — Te beran gurand, ma birayê berên nîne?
Tu as écorché le bélier, n'a-t-il donc pas de frères (qui chercheront à le venger ? )

114 — Teyr baş e, bi refê xwe re.
Oiseau ne vaut qu'en vol.

115 — Teyrin hene goşt dixwin, hin hene goştê wan dixwin.
Il y a des oiseaux qui mangent la viande, et d'autres qu'on mange la leur.

116 — War ew war e, lê bihar ne ew bihar e.
C'est bien le même camp, mais pas le même printemps.

117 — Xewa miriyan tê, xewa birçiyan naye.
Qui est mort peut dormir, mais non qui a faim.

118 — Xeyalê aşvên av e.
Le rêve du meunier, c'est l'eau.

119 — Xêr bi rêz e, şer bi rêz e.
Le bien a son tour, le mal aussi.

120 — Xizanî kirasê hesinî.
Misère, chemise de fer.

121 — Xwîn nabe av.
Sang ne devient pas eau. ( On ne peut pas pardonner une offense grave. )

122 — Ya şêx Misûr dox dirêj e, naçe tûr.
O cheykh Mesur, la queue est trop longue pour entrer dans la musette. ( Tu ne peux pas nous en faire accroire ).

123—Yekî li zikê yekî dida, digo: «Ay pişta min!»
On frappait quelqu'un sur le ventre, il disait: « Ah! mon dos! ».

( A suivre ) TAWÛSPARÊZ

---

Kiriyariya Hawarê 500 Qirûşên Sûrî

Xwedî û gerinendeyê bepirsiyar: Mîr Celadet Alî Bedir-Xan . Şam—Sûriye

Directeur Propriétaire : Emir Djéladet Aali Bedir-Khan, Damas-Syrie

ŞAM—1942 — ÇAPXANA SEBATÊ

SAL 10
HEJMER 48

ŞEMBÎ
15 TEBAX 1942

# HAWAR

ANNÉE 10
NUMÉRO 48

SAMEDI
15 AOÛT 1942

KOVARA KURDÎ ★ REVUE KURDE

DI VÊ HEJMARÊ DE



## TEFSÎRA QURANÊ

168 — Ew tirsonek û minafiqên ko di roja şerê Ihidê de ji bajarê Medînê derneketi bûn, wan di heqê mirovên di xwe de yên ko di riya Xuda de hati bûn kuştin digot: Heke wan biya me bikirana, ne dihatin kuştin. Bêje wan: Heke gotina we rast e, gava mirin nîzikî we dibe ka hon canê xwe jê xelas bikin.

169 — Yên ko di riya Xwedê da ketine, hon wan mirî mehesibînin. Canfedayên riya Xwedê ne mirî ne, Xuda wan bi xwedî dike.

170 — Ew gihane kerema Xwedê û pê dilxweş û bextiyar in û ew dixwazin ji hevalên xwe re ko di riya Xwedê da xwe didin kuştin mizgîniya xweşiyê bigehînin û ji wan re bidin seh kirin ko ji bo wan ne tirsa roja pişdawiyê û ne jî xem û axîn heye, cihê wan bilind e û qedrê wan wê bête girtin.

171 — Mizgîniya kerem û nîmeta Xwedê digehe wan û ew seh dikin ko Xuda sewaba qencî û mêraniya wan ne ji bîr dike û ne jî dihêle ko ew winda bibe.

172 — Yên ko di şerê Ihidê de, piştî ko birîndar bûne, dîsa li gora emrê Xuda meşiyane û yên ji wan ko bindestiya Xwedê û pêxemberê di wî kirine û tiştine qenc pêk anine û ji xirabiyê xwe dane paş, ewê bigehin xeyreke mezin.

173 — Binin bîra xwe gava mirovên minafiq kom bû bûn û ji şerkerên riya Xuda re digotin: Dest bi şerî me kin, dijminên we gihane hev, hon hindik in, ew pir in, hon qels in ew xurt in, hon bi wan nikarin; gotina fitnekaran, baweriya şerkerên riya Xuda hêjqaimtir dikir, dest û lepên wan dişidiya; dilê wan xurt dibû û guh li gotina fitnekaran ne didan û vedigerandin wan û digotin: Xuda besî me ye; jê xweştir arîkar peyda na be.

174 — Bi arikariya Xwedê ew ji mêdana şerî bê xisar û zehmet zivirîn û bi mêraniyê ketin pey emrê Xwedê. Kerem û comerdiya Xwedê mezin e.

175 — Bi wê gotinê Iblîs dixwest arikarên xwe bitirsîn! Ma ne kifş e ? Heçi ko pey bezma Mihemed ne çûne şerî, arikariya Şeytên kirine. Her wekî hon mirovên bawermend in, ne ji Iblîs û hevalên di wî, lê ji min bitirsin.

176 — Dilê te, ji emelê kafirên ko xeyreta hev dikişînin û di xirabiyê de pêşî ji hevûdu distînin xemdar ne be. Ew nikarin ji Xuda û bindestiyên wî re tu zererê bigehînin.

Xuda ji wan re, di roja piştdawiyê de ji xweşiyê parekê ji na de wan. Ji bona wan êşeke mezin heye.

177 — yên ko baweriya xwe a pak bi kufrê difiroşin û dikin bihayê wê, ji Xuda re tu zererê na kin, ji bo wan ezabekî dijwar heye.

# REŞBELEK

## — 2 —

### JI CEMŞÎD Û SÎNEMXANÊ RE

YÊN KO BERÊ XWE DANE ZOZANAN Û ÎRO DI HAVINGEHA ZEBEDANÊ DE NE [1]

Zaronol

Diya wehûrmûrên we didan hev; hon kar dibûn. Me ji we re gotî bû ko honê herin Zebedanê. We ji min pirsî: Zebedanî çi ye, ew jî wek bajarê Şamê ye?

Min ji we re gotî bû; no Zebedanî ne bajar e, Zebedanî zozan e, havingeh e. We dîsan pirsî, ma zozan çi ye? Minê ji we re bidaya zanîn, lê nizanim çi kete navê û ştexaliya me hate birîn.

Niho guh bidin, ezê ji we re di stûnên Hewarê de bibêjim zozan çi ye. Ji xwe hêj çêtir e ko ez hi we re, di vê babetê de, li ber destê Hawarê biştexilim. Bi vî awayî ji hevalên we yên ko li derveyî Kurdistanê bûne û beyama zozanan ne dîtine û ew ne bihîstine ewê jî lê serwext bibin.

Li wextê berê kurdmanc koçer bûn. Gava ez kurdmanc koçer bûn dibêjim, jê mexsed ne ew e ko kurdmancan gund û bajar nîn bûn. Kurdmancan qesr û bircine welê hebûn ko ew ji hezar salan de heta îro li ser himên xwe sekinî ne.

Heta vê paşiyê jî birekî kurdmancan di koçeriyê de dijîn û vê jiyînê di ser jiyînai deınanî re digirtin. Çire? Ezê paşê evî jî ji we er bibêjim.

Ez dizanim honê niho ji min bipirsin, ma koçer jî çi ye û koçerî çi teva ye? Koçer ji wan xelkan re dibêjin ko Havîn û Zivistanan di cihekî de rûnanin û cih û warê xwe li gora sar û germbûna bayî diguhêrînin; li Zivistanê têne germiyanan û li Havinê vedigerin havingehan û diçin zozanan. Sinheta van xelkan ji cotkariyê bêtir şivanî ye; pez bi xwedî dikin. Herçî xelkê ko ji bervajî ve salê pê de di cih û gundekî de rûdinin û nemaze bi cotkariyê mijûl dibin ji wan re jî dêmanî dibêjin.

Koçer di tevinê de jî xurt in.

Herçî dêmanî, ew jî salê pê de di gundên xwe û di bin banan de ne diman. Nemaze yên ko di dora gundên wan de mêrgin hebûn. Biharê, ewan konên xwe li wan mêrgan vedigirtin û havingehên xwe tê de çêdikirin.

Lê. zarono, ez dibînim ko em ji zozanan bi dûr ketine; lê me dev jê bernedaye. Bi tenê piştî ko salên min gihaştine pêncihî riya zozanan ji min re hinek zehmet e. Ji ber ko riya wan bilindcihan kaş e, hevraz e,

Zozan, zozanî... bihuşta koçerên mîran. Zozan, ev çi gotineke spehî û şêrîn e. Di kelkela Havînê de bi tenê bi bilêvkirina wê can û giyanê mirov honik dibe û bi xiyala wê mirov hişkahiya tebletê ter û heşîn dibîne. Belê zozan.... zozan....: bihuştą şivan û bêrîvanan. Nizanim çawan bû ko heta niho min ji we re qala zozanan ne kir.

Birakî we hebû; ew nûxwiriyê min bû; we ew ne dît. Min navê mamekî we lê kiri bû: Sefder. Derdekî bêderman pê ket û herwekî hon dibêjin û wek manıê ko ewî navê wî hildigirt, çû cem Xwedê. Sefder şeşmehî û di nav dergûşê de bû; ji xwe tucaran li ser pişta xwe ranebû, min jê re digot: « Sefder, koçer çûne zozanan ». Sefder bêî ko bizane kêfa xwe ji vê gotinê re tanî û dikenî. Ev gotin bir û

---

Reşbelek zarowan a pêşîn di hejmara Hawarê a 44an de belav bûye.

# DÎWANA MELÊ

## — 32 —

Sir-rî wehdet ji ezel girtiye het-ta bi ebed
Wahid û ferd e bi zatê xwe wî nînin çu eded
Di qedem da ezel û eyn û ebed ber du yek in
Sermediyet we dixwazit ne ezel bit ne ebed
Ferq e wahid ji ehed lê di meqamê semedê
Bi heqiqet ko bikin ber du çi wahid çi ehed
Yek e derya tu bizan qenc çi mewc û çi ji hebab
Di esil da ko hemî av e çi av û çi cemed
Aftabi ehediy-yet di xwe de girtiye kewn
Ne ko ewrek heye lê girtiye çehvên me remed
Hisn û zatê bit û latan ji cemada semed e
Ji misala senemê weko teclaya semed
Ẍeyrî derya niye sehra bi heqîqet em-ma
Ji rûyê kef û kemê ev av biye şibhi zebed
Kul-li yewmin huwe fî şe'n nebî x̄afiî jê
Her peyapey ji şiûnan digirit feyz û meded
Ger dê Adem bidiya sir-ri ilmî Iblîs
Hînema ebsere keb-bere hîne we seced [1]
Çi zeman û çi mekan û çi cihat û çi hidûd
Çi meqadîr û tefasîl û hisab in çi eded
Çi minafat û lizûm in çi qiyas û çi misal
Ev çi tewlîd û çi terkîb e çi rûh in çi cesed
Ser bi eczê diderit qew-wetê der-rakeyî ma
Yerce'ei qelbû qelîlen we meta qame qe'ed [2]
Heyret û ecz û serencam di babê nezerê
Key bi xaliq nezerê qasiri mexlûq resed
Guftigûyî me'rifetê çendî Mela peyda kî
Gewhera me'rifetê nagihete kes bixered

(١) حينا ابصره كبّر حيناً وسجد

(٢) يرجع القلب قليلا ومتى قام قعد

Di nivîşta Hawarê de

يرجع القلب كليلا ومتى قام قعد

Yerce'il qelbû kelîlen we meta qame qe'ed

tirba wi ye. Ji ber ko kekê we beri ko zimanê wi bigere çû bû nik Xwedê û ne wek Sinemxanê «Ez sitiya Bota me» ne ji wek Cemşid «Ez merê qenc im» goti bû.

Lêbelê, zozan, zozan.. warê siwarên serhedan.

Ji germiyanan diçine zozanan.

Zivistan e, welatê kurdan di bin poşiya berfê a spi de nixumandi, nivisti ye. Koçer û dêmani gibaştine hev; li ber tifikê qelûnê dikişinin. Terş di şkeft û zivingan de, dewar di atewl û axuran de ne. Jin li aliyê malê nanên xwe bi tenûrê ve didin, hiriyê dirêsin, goran çêdikin û ji zarowan re dilorinin, dergûşên wan dihejinin.

Di civatan de koçer ji dêmaniyan bêtir dipeyivin û tiştên ko di riyên zozanan de ditine ji civatnişinan re qise dikin.

Bi vi awayi digehin Biharê; koçer û dêmani cejina Newrûzê bi hev re şahinet dikin, qewitiyên xwe li hev dikin; xatir ji hev dixwazin; heta bi Paizê.

Seqem şikestiye; zora sermayê çûye; di lêf û pesaran de giyanermik dest bi şinbûnê kiriye; hirç ji kunên xwe hatine der û lê digerin.

Sibe roja barkirinê ye. Koçer, tev de, jin û mêr, pir û ciwan wek ordiwa ko seferberiya wê hate ilan kirin, xwe kar dikin. Karê seferekê dûr, sefereke welê ko beri ber bi jor û her ber bi bilindcihan e; pê bi pê, gav bi gav ji ezmên re nizingtir û ji nizmiyê dûr, hildikişin.... hildikişin....

Kitkitên konan li erdê raxisti ne... stûn, şelit, guliçk, çasir, nêvber, têj, perispan, kêlik, xurb, çit, berçit, ping, sing, bersing, tirij, çap h.d..... Li rex wan têr, tûr, xurcik, meşk û hevan; diz û dizik, den û qersûnek in. Herçi beroş, sêni, cifni û bergeş; ji xwe ew ji beri çend rojan de nik spiker in. Jin li van tekberan kom bûne, toz û ritama wan diweşinin, li wan hûr dibin, derzi û şûjin bi desti ve, wan didûrin, û pi ne dikin.

Li aliyê hewşê şinginiya çakûç û simtiraşan e; dewar li rex hev sekini, bi dor lingên xwe li ber solbend radikin û solên xwe ji bo kuç û ferşên zozanan nû dikin.

Wê şevê li koçerên ko rojê pê de xebitine, xew giran bûye. Lê berçi dewar, wek zarokên ko kêfa xwevji solên xwe ên nû re anine şevê pê de lingên xwe li erdê didin û pikoliyê dikin; kêfxweş in. Ji rûniştina Zivistanê tirxan bûne.

Bi sariya sibê ve karwan bi rê ketiye. Karwaneki welê qey tu dibêji bajarek e, bi ling bûye û bi rê ve diçe. Ma çi heye ko ne pê re ye.

Ji xwe şivan keriyên xwe beriya karwên ajotine û seyên gurxenêk li gurên birçi yên ko li riya pez kemin bûne, qelibine û hevûdin dirandine.

Karwan dimeşe.... sipanine berfê, yên ko ji dûr ve, bi tirijên tavê ên pêşin, wek pipo qine şikesti diçirişin, dest bi xuyakirinê dikin. Di hin deran de berf heliyaye û erd di spitabiya berfê re wek qulên çarşeveke spiûkevin reş dike.

Tayên berfê ji rûyê erdê radibin û wek peline spi, xwe ber bi bilindicihan ditewinin. Kulikên ko xwe di bin germiya berfê de veşarti bûn, adarik, pelezêsk; pitanik, firisk û gangilok, ev bûkên Biharê – mina çiçikên mirişkan yên ko ji qalikên xwe ên spi der dibin — sor, spi, mor û xumri seri hildidin.

Bûkên nû, yên ko bi nûxwiriyên xwe ve ji bo cara pêşin di vê rê re diçin bi her zarina berşirên xwe disekinin û devên zaroyên xwe didin ber singên xwe. Herçi jinên sere bi çavine mihirvan li wan fedikirin û dibêjin «Heq di destê wan de ye, me ji holê ne dikir, me ji bawer ne dikir ko, heke zaro hinek giriyan heye ko tifaqek li wan biqewime. Lê pişti ko wan ji çendek anin, ew ji ewê bizanin ko êşa ko zarowan nagirine ji êşa ko wan digirine xedartir e» û karwan ji deştê bi hewa dikeve, karwanvani şa û bi kêf in... distrên.... dinehwirinin....

Zozanvaniyan zozanên dilê xwe diçêrandin....

. . . . . . . . . . . . . . . .

Koçer diçin zozanan û ji nû ve digehin warên ko tê de ne kêç, ne mêş ne ji pêşi hene. Hewa saf û sivik e, sira bê giraniya bedenên wan şiştiye. Koçer ji nû ve çist û çalak in; xwin di rayên wan de ne wek ava çeman lê wek ava şip û avşaran diberike. Lingên ko niho di ser şehar û şaxuran re xwe zer kerine di laşên wan de tu movikên tirxan ne hiştine.

Koçer diçin, diçin... zozanan.. Rêberê wan berf e; dane şopa berfê. Berf dihele, ew didin pey... Heta roja ko berf ji nû ve dest bi ketinê dike. Koçer hingê ji ber berfê dikişin. Biharê, wan da bû pey berfê. Paizê, berf dide pey wan û wan dadixine jêr. Qey berf naxwaze ko koçer pê lê bikin û singa wê a spi bi reşikên xwe reş bikin. Koçer ji ji ya wê dikin, pê lê nakin û xwe didin deştê.

Belê zaronol koçer bi vi awayi Bihar û Havina xwe di zozanan de diborinin û Paizê

vedigerin germiyanan. Û kurdmanc hejî vê jiyînê, hejî koçeriyê dikin. Çire? Ji ber ko koçerî azahî ye û kurdmanc bendeyên azehiyê ne û azahî di bajarên wan de ne maye.

Ji ber ko bajar, bajarên Kurdistanê ketine destên dewletên biyanî û memûrên ne ji wan. Bajar bajarên wan, lê qanûn û nizam, qanûn û nizama romiyan.... Kurdmamc ji wan qanûn û nizaman derevîn û bi tenê koçeriyê ew ji qanûnên bajaran, ji nizamên dewletên vegertiyar xelas dikirin û ew digihandin bilindcihên çiyan, çiyayên ko ber bi ezmanan serî hildidin û nizingî li Xwedê dikin.

Belê zaronoî ji ber ko qanûn û nizamên romî ketî bûn bajarên wan, kurdmanc xwe didan çiyan û xwe dispastin qanûn û nizamên Xwedê. Herçî li jiyîna Kurdmancan a civakî **hişyar** in rinb dizanin **ko kurdmancan xêra eşîrî û koçeriyê ziman û nijadê xwe pak û weke xwe** hilanîne.

BAVÊ CEMŞID

# NÊÇÎRA HIRÇAN

**Li Mirdês** di gundê Xêştûrê da bi navê Mela Elî nêçîrvanek hebû. Rojekê Mela Elî çû bû nêçîra kewan û sê kew kuşti bûn. Di vegera mal da rastî hirçekî hatî bû û di navbera wan da pevçûneke xweş bû bû. Ji bo ko xwendevanên me agahî ser û berê vê pevçûnê bibin divê em rê bidin gotina nêçîrvan. Mela Elî got:

Wê rojê ez çû bûm nêçîra kewan û min sê kew kuşti bûn. Di vegerê da ji bo vehêsinê ez li ser kanikê rawestiyam. Hin ez nih rûnişti bûm ko min hirçekî nêr li pêşberî xwe dît. Herwekî em ji hirçan dizanin; heya mirovek teng nekeve ser, an bi birîn neke nizingî mirov nabin. Lê vî hirçî welê ne kir. Ne ez teng ketî bûm ser wi û ne jî min ew bi birîn kiri bû. Tevî vê yekê hat û li pêş min rawestî. Tu deng jê ne dihat, her li çavên min dinêrî. Xweya bû tiştek di dilê wî da heye. Tifinga min ne vala bû, lê tu berik jî tê da tine bûn. Herwekî adet e ji bo nêçîra hirçan em du berikan dêxine tifingên xwe. Îro ji bo nêçîra kewan min çend zo balme (xurdek) xistî bûn ê. Bi vî zikê tifingê min ne dikarî bela xwe di hirçî bida û bi rihetî jî jê filitîn dişwar bû. Wî her li çavên min dinêrî; lê nêrînek bi neyarî.

Êvar nizîng bû, ji bo min çûyîn diviya bû. Heya şev reş bûye min nikarî bû welê mat li pêş hirçî bimînim; her tevgerek diviya bû. Hingê hate bîra min: Ne be ko hirçî ji birçîna berê xwe da be min û çav li xwarina goştê min be? Li ser vê ramanê min kewek di tûrê xwe yê nêçîrê da bi derxist û avête pêş wî. Hirçî lermê kew bi rihetî rakir û da ber difna xwe bîn kir û paşê berjêr avêt. Bi vî awayî min her du kewên din jî yek bi yek avêtine ber, wî jî ew her du kewana di par ra gihandine yê pêşîn. Vê carê êdî tiştekî ko min bavêtanayê ne ma bû. Bê şivîşk çavên wî li min bûn. Hêdîka min dest bire ser tifingê. Wî qes da min nasî bû ko di pê ra xwe avête ser min.

Ji ber ko kanî di navbera me da bû' berî ko ew xwe bigehîne min, min berê tifingê li sînga wî saz kir. Bi dengê tifingê ra horînek ecêb bi ser ket û hirçî xwe gihande min. Berê, tifing ji dest min girt du ta kir û avête wê giharê hinga xwe tevle min kir. Standin û du ta kirina tifingê du sê saniyan ne ajotî bû. Bê ko ez rêke felatê biramim, min xwe di himbêza hirçî da dît.

Erê çiqas ko neyarê min hirçekî nêr bû; lê ez bi ged û hêlên xwe jê ne kêmtir bûm. Min jî dest di nava wî ra bir û me hev û din kut kir. Heke mikûna hirçî hebûya ko min ji xwe bi dûr xe; teqez wê bi çeplên min bigirta û ez li kuçekî bidama. Lê min nava wî zemt kiri bû û diviya bû pişta wî deynim erdê. Serekî dirêj me hev û din bir û anî. Dawî bi piraniya tifkirina ser çavên min, ez şaş kirim û nava xwe di nav çeplên min da bi derxist. Hinga rahişte milê min û du sê caran ez li erdê xistim. Êdî tu ya xêrê di cendekê min da ne ma bû û min nema dikari bû li ber xwe bidim. Wê demê hirçê delal hate benda min û kulmikan.

Êdî nema min dikari bû çavê xwe rakim. Berî her tiştî pencek li serê min da û çermê serê min daxiste dor guhên min. Paşê bi dilê xwe ji sîng û pişta min da. Serekî ez welê di nav lepên xwe da vepûrisim, dawî min dît ko dev ji min bernade; êdî min xwe li mirinê na.

Gava hirçî dît ko ez nema dilebitim, ji lêdanê geriya û guhê xwe da ser bêvila min. Min qenc bihna xwe bi xwe da girt, ne deng û ne ji pişîn ji min ne dihat. Dema ez di wî halî da dîtim ez hiştim û çû. Lê ji xilxila xilikên ber lingên wî min zanî ko dûr ne çûye.

Serekî ez welê mam û ne dipizivîm. Gava dît ez napizivim cardin vegerî ser min. Min dîsa bihna xwe bi xwe da girt. Vê carê wek bijişkê ko dixwaze nexweşiya nexweşê xwe fêr bibe dûr û dirêj cendekê min palmisand û guhê xwe da ser difna min. Dawî ko baweriya xwe bi mirina min anî, hema di rex min da bi çepolan gorek di nav xîçilan da, veda û ez rakişandim ê. Dîsa bi kevir û xilika

ser min por kir. Qey ko bi wê ji dilê wî rihet ne bû bû ko, dixwest zinarekî mezin ji bi ser min da wer ke; da ko ji derketina min bê qisawet bimîne.

Di rex me da zinarekî zehf mezin hebû, çû xwe da paş û zor kir. Zinar gelekî mezin bû, hikmê wî lê ne dibû. Eger ew ji bi ser min da tot kiri bûya êdî dinya ko min bidiya ew binga bû. Sed xêra Xwedê ko zora wî li zinêr ne bû û dev ji min berda û çû. Heya giha serê çiyê dengê pelepela wî di guhê min da bû. Ji ber ko zora wî li zinêr ne bû hû ewçend kiz dibû û ji erna dikire lewelew.

Piştî ko di gaza çiyê da wer bû êdî nema deng jê hat, şev ji qiriya bû, kevir û xilikên ko bi ser min kiri bû ne gelek bûn. Min da xwe û ez rabûm. Cendekê min herwekî bi mirkut bête kutan, ciheki rihet tê nema bû. Berî her tiştî min çermê serê xwe di dor guhên xwe da rakir û herdu serî anîn berhev û destmala xwe di ser ra girêda. Paşê min her sê kewên xwe bi tifinga dutabûyî va li erdê hilanîn û berê xwe da mal.

Herwekî em ji hirçan dizanin goştê taze û nih naxwin. Çi gava çend roj bi ser da çûn, û genî bû bîn ketê; dê hinga bixweMe. qseda ko cendekê min vedişart ji, ji bo wê yekê bû. Ew zinarê ko dixwest bi ser min da tot ke ji, ji bo ko tu cinawirên din berî hatina wî goştê min nexwin.

Dema hirçî ez vedipûm ser hev û li min dixist min sonda tola xwe xwarî bû; lê çawan careke din ez û wî, emê rasle hev bihatana?! Hirç di çiyê da pir in; paşê min dê ew çilo binasîna?!

Di vegera mal da awayê ko ez pê tola xwe ji wî hirçî hilînim hate bîra min. Ji xwe piştî çend rojan ji bo xwarina goştê min ê genî wê bihatana cihê ko ez tê da veşartî, hinga tol girtin gengaz bû. Berî her tiştî zûka dermankirina birînên min diviya bû.

Bi nîv şev gihame mal û min birînên xwe dane derman kirin û pêçandin. Roja sisiyan ez di nivînê da bi derketim û tevî hirayê xwe hatime ser gora ko hirçî ji min ra çêkirî. Me disa gor weke berê kir û li pêşberî gorê jî kozikek ava kir.

Ji wê rojê da min û birayê xwe me dev ji kêr û iş berda û ji sibê heya êvarê di wê kozikê da çavdariya gorê û hatina hirçî kir.

## MEMOZÎNA EHMEDÊ XANÎ

— 5 —

### EŞ'ARI MEDÎHETA TEWAÎFÊ DI KURDAN E, BI ŞECAET Û XÊRETÊ Û IZHARA BEDBEXTÎ Û BÊ TALIIYA WAN E DIGEL HINDE ŞECAET Û HEMIYETÊ

Saqî tu ji bo Xwedê kerem ke
Yek cir'ei mey di camî cem ke
Da cam bi mey ciban-nima bit
Herçî me irade ye xuya bit
Da keşif bibit li ber me ehwal
Kanî dibitin miyesser iqbal
Idbari me wê giha kemalê
Aya biwe qabilî zewalê
Ya her wibe dê l'istiwa bit
Het-ta weko dewr mintiha bit
Qet mimkin e ev ji çerxi lewleb
Tali' bibitin ji bo me kewkeb
Bextê me ji bo me ra bibit yar
Carek bibitin ji xab hişyar
Rabit ji me jî cibanpenahek
Peyda bibitin me padişahek
Şirî hinera me bête danîn
Qedri qelema me bête zanîn
Derdê me bibînitin ilacê
Ilmê me bibînitin rewacê
Ger dê hebiwa me serfirazek
Sahib keremek sixen-niwazek
Neqdê me dibûye sik-ke meskûk
Ne dima wihe bêrewac û meşkûk

Herçend ko xalis û temiz in
Neqdîn bi sik-keyî eziz in
Ger dê hebiwa me padişahek
Laiq bidiya Xwedê kulahek
Tayin bibiwa ji bo wî textek
Zahir ve dibû ji bo me bextek
Hasil bibiwa ji bo wî tacek
Elbelt-te dibû me ji rewacek
Xemxwarî dikir li me yetîman
Tinane derî ji dest leîman
Xalib ne dibû li ser me ev rûm
Ne dibûn xerabey di dest bûm
Mehkûmi eleyh û sialik
Mexlûb û miti'î tirk û tacîk
Em-ma ji ezel Xwedê wisa kir
Ev rûm û ecem di ser me ra kir
Tebeiy-yeti wan egerçî ar e
Ev ar li xelkê namidar e
Namûs e li hakim û emîran
Tawan çi ye şair û feqîran
Herçî bire şirê desti him-met
Zebt kir ji bo xwe b'mîri dewlet
Lew-ra ko cihan wekî erûs e
Wî hikim di destê şirî rûs e
Lê eqd û sedaq û mihr û kabîn
Litf û kerem û eta û bexşîn
Pirsî ji dinê min ev bi hikmet
Mihra te çi gote min go him-met
Hasil ko dinê bi şîr û ihsan
Tesxîr dibit ji bo wî insan
Ez mame di hikmeta Xwedê da
Kurdmanc di dewleta dinê da
Aya bi çi wechî mane mehrûm
Bilcimle ji bo çi bûne mehkûm

Wan girt bi şirî şehri şihret
Tesxîr kirin biladi him-met
Her mîrekî wan bi bezli Hatem
Her mîrekî wan bi rezmi Ristem
Bifkir ji ereb heta ve gurcan
Kurdmancî ye bûye şibhi bircan
Ev rûm û ecem bi wan hisar in
Kurdmanc hemî li çar kenar in
Her dû terefan qebîli kurdmanc
Bo tîri qeza kirîne amanc
Goya ko li serhedan kilîd in
Her taîfe sed dikin sedîd in
Ev qulzimi rûm û behri taçik
Hindê ko bikin xirûc û tehrîk
Kurdmanc dibin bi xûn milet-tex
Wan jêk ve dikin misali berzex
Cwamêri û him-met û sexawet
Mêrinî û xêret û celedet
Ew xetme ji bo qebîli ekrad
Wan dane bi şîr û him-met û dad
Hindê ji şecaetê xeyûr in
Ewçend ji min-netê nifûr in
Ev xêret û ev iliw-wi him-met
Bu mani'i bemli bari min-net
Lew pêk ve bemişe bê tifaq in
Daîm bi temer-rid û şiqaq in
Ger dê hebiwa me it-tifaqek
Vêk ra bikira me inqiyadek
Rûm û ereb û ecem temamî
Hemiyan ji me ra dikir xulamî
Tekmîl dikir me dîn û dewlet
Tehsîl dikir me ilm û hikmet
Temyîz dibûn ji hev meqalat
Mimtaz dibûn xudan kemalat

# REWŞA DINYAYÊ

PIRSA HINDISTANÊ — Li 7ê Tebaxê kongra Hindistanê di Bombayê de gihaye hev. 10 000 nimînande di kongrê de hazir bûn. Mehatma Gandî qederê saet û nîvekê peyivî û ji lebatan re sebebên gihanheva kongrê da zanîn. Kongrê piştre dest bi mizakera qerara encimena icraî kir. Encimenê qerar da bû ko ingiliz ji Hindistanê derkevin û istiqlala Hindistanê bête ilan kirin. Kongrê ev qerar bi piraniyeke mezin tesdîq kir û ji milê din qerar da heke ingiliz ji welatê wan derneketin xelkê Hindê dest bi îsyana medenî bikin.

Ingilizan dît ko bistehî yanî asayîşa Hindistanê wê xerab bibe. Li ser vê yekê û li 9ê mehê waliyê Hindistanê Gandî, Nehrû, Mewlana Azad û ji lebatên kongrê qederê 250 peya dan girtin. Li ser vê yekê di bin bajaran de esker û ehaliyan li hev xist. Lê eskeran zora ehlaiyan bir.

ŞERÊ MISIRÊ — Di şerê Misirê de tiştekî nû nîne. Welê dixuye ko her du alî jî xwe ji bo êrîşeke nû kar dikin. Bi tenê di Behira-spî de ji 11ê mehê heta 14an şerekî behirî û hewayî çêbû. Vaporqefleke ingilizî ji Cebeltariqê diçû Maltayê. Dema qefle di ber Sicîlyê re dibori balafirên mihwerê bi ser qeflê de girtin û stola talyanî jî xwe tevlî vî şerî kir. Elemanan û talyanan got ko di vî şerî de ji cenkeştî û barkêşên ingilizî qederê panzdeh keştiyan hatine bin av kirin, qefle ji hev de ketiye û ji vaporan hin vegeriyane Cebeltariqê û çendek giha hin jî Maltê, tu xêr di wan de ne maye.

Li 14ê Tebaxê ingilizan der heqê vî şerî danezanek belav kir û got ko eleman û talyan mibalexê dikin û rastî ev e: Di vî şerî de balafirbilgira ingilizî « Îgil » bi 22000 ton mezin û krewzora Mençester bi deh hezar ton mezin û hin vaporên barkêş binav bûne û xesar gihaştiye hinan; lê qefle xwe gihandiye Maltê. Ingilizan ji krewzoreke talyanî û du noqar xeriqandine.

ŞERÊ PESÎFÎKÊ — Li Pesîfîkê ji 7ê vê mehê ve emêrikanî dirêjî japonan dikin.

Li ser riya Emêrîke û Ewlstralyayê komek girav heye, ji wan re giravên Silêman dibêjin. Japonan ev girav di vî şerî de xistine destê xwe. Li 7ê Tebaxê qewetên emêrikanî bi hin yekînekên ewistralî ve dirêjî wan giravan kir û esker derêxiste hinan. Li bej, li behir û li hewayê şer e. Lê heta niho ji vî şerî tu netîce ne hate rû.

Japon dibêjin eskerên emêrikanî yên ko ketine bejê ji warên xwe qut bûne, ji her ko vaporên emêrikanî vegeriyane wargehên xwe. Lê emêrikaniyan da zanîn ko işê giravên Silêman heye ko gelek dom bike û beriya netîca qetî emêrikanî hew danezanan belav bikin.

ŞERÊ ÛRIS — Bi pêşveçûna ordiwên elemanî, di qada nîvro de rewşa Rûsyayê hero xeternaktir dibû û ûris ev venedişartin. Bi dengekî bilind ev digotin û arîkariya hevalbendên xwe dixwestin. Ev bûne deh panzdeh roj rojname û radyowan digot ko Çorçil ji bona vê yekê çûye Moskoyê. Lê Londrê ev nûçe teyid ne dikir. Li 17ê Tebaxê hikûmeta Ingilterê bi awakî resmî da zanîn ko Çarçil çûye Moskoyê û digel nimînendeyê Emêrîkê Mr. Heriman bi darî Stalîn ketiye û ji bo şikestina elemanan û zefera sondowariyan tevdîrên gerek mizakere kirine. Welê tête texmîn kirin ko di vê hedûdîtinê de mesela eniya nû jî hate mizakere kirin.

Herçî qada şer, di eniya bakûr de ûris êrîş dikin û eleman di midafehê de ne. Lê di eniya nîvro de êrîşa elemanan dom dike û ordiwên elemanî gihaştine qûntar û deriyên çiyayên Qevqasê.

Piştî ketina Rostovê, elemanan ji alîkî berê xwe da rêhesina ko Stalîngradê bi bendera Novorosîskê re girêdide û ji aliyê din bi qewetên ko li nîvro derbasî çemê Don bûn qesta rohelê kir.

Baskê ko berê xwe da bû nîvro piştî ko peravên behira Azovê yên rohelê paqij kirin li 2ê Tîrmehê gihaşte bajerê Yêskê û rêhesina Stalîngrad-Novorosîskê birî û li 4ê mehê gihaşte çemê Kûban û pirin avêtane ser çem. Ûrisan gelek berevaniya mintiqa Kûbanê kiri be jî eleman li 9ê Tîrmehê ketine bajarê Kresnodarê, merkeza Kûbanê û jê avêtine Meykopê. Li Mevkopê bîrine petrolê hene. Ûris hêgav man, agir bi bîrên petrolê xistin û terka Meykopê jî dan. Bi vî awayî elemanan nîzingî li peravên Behira-reş yên rohelê jî kir. Baskekî ordiwa elemanî piştî vegertina Maykopê berê xwe daye Grosniyê, mintiqeke petrolê.

Herçî baskê ko berê xwe da bû rohelê di dirêjahiya çemê Manêç de meşiya û berê xwe daye behira Qezwînê. Eleman bi vî awayî di wextekî kurt de gelek pêş ve çûne û bakurê welatên Qevqasê tev de vegirtine. Lê Stalingrad hêj ne ketiye destê wan û ev bûne 3 hefte dora Stalîngradê de şerine dijwar çêdibin. Li 15ê mehê elemanan da zanîn ko di hindava Stalingradê de eskerên elemanî di her derê de gihaştine Çemê Don. Dilê elemanan hebû di Stalîngradê re bigehin Volgê. Lê gava dîtine ko Stalîngrad gelek li ber xwe dide niho dikin di Esterxanê re bigebin devê Volgê û wê riyê jî bigirin.

Li gora nûçeyên paşîn eleman di hindava Stalîngradê de li enîşka çemê Don jî derbas bûne û gihaştine wî milê avê. Bi vî awayî elemanan 60 kilomêtir nîgingî li Stalîngradê kiriye. Herçî Grosnî, di vê mintiqê de ji ûris bêgav man û xwe dane paş. Di navbera elemanan û petrolên Grosniyê qederê 200 kilomêtir maye.

Şam: 15 Tebax 1942 NÊREVAN

---

Roja heştan piştî rohelat bi du saetan hirç di gaza çiyê da bi derket û berê xwe da gora min. Tifingên me di dest me da bûn; lê ne wek berê ji bo nêçîra kewan dagirtî, vê carê ji bo kuştina hirçekî nêr. Me her yekî du berik êxisti bûnê. Rast hate ser gorê û dest bi vedanê kir. Gava gor vala dît, borîn ketê û rabû ser lingên paşîn. Wê hingê bû ko dûyê du tifingan di kozikê da dirêjî pêsîra hirçî bû û pê ra deng jê vemirî.

Piştî vê bi du rojan min kavilê hirçê xwe di diwana axayê Mirdêsan Hecî Ebûzer axa da raxisti bû. Herçî kesên ew kavil dîtîn digotin: « Me hîn hirçekî holê mezin ne dîtiye ». Vê gotina han hinekî şerma bindestiya min direvand û min bi xwe ra digot: Bindestî ne ji pisîya min, lê ji pirxurtiya hirçî bûye.

OSMAN SEBRÎ

# GOTINÊN ŞOPEWER [1]

## BEXT

Bi navê bext tiştek heye ko carina di rewşeke kesînedî da xwe dinimîne û bihayê kira wê hingê winda dike. Lê bext ne rasthatineke dûrî kirê ye. Ew havila kireke kevn e; ko di demeke nepayî û di rengê rasthatinê da li mirov bi dertê. Kireke baş, bextçakiyê û kireke nebaş bextereşiyê tînin pêş xwediyê xwe.

Ne bi tinê kirên mirov, carcaran kirên bav û kalan jî di kirasê « bext » da têne pêş kur û neviyan.

## TIRSA MIRINÊ

Kesên ko dimirin digehin Xudayekê dilovan. Ji ber vê yekê tirsa mirinê ji mirovên bawermend ra şermeke mezin e.

## ŞOPA TERBIYÊ

Terbiye ji sê tiştan pêve hemî sinçiyên [2] mirov herwekî bixwaze diguhêzîne.

mêranî — tirs
comerdî — çikosî
xêrxwazî — bedxwazî

Ev her sê tiştên han di afirandina mirov da çilo bin welê dimînin Terbiye tucaran nikare mirovekî mêr, tirsok û comerd, çikos û xêrxwaz jî, bedxwaz bike. Ji vê pêve herçî sinçiyên mirov hene bi terbiyê têne guhartin û mirebî çawan bixwaze dikare berê şagirdê xwe wê da biguhêzîne.

Bi tinê yek heye ko ji van her sê sinçiyên jorîn şopa heval an mirebî çiçkekî kêm an zêde dike; lê bicarê nikare bade.

OSMAN SEBRÎ

---

[1] Şopewer: Her tiştê ko lê bikim û manake kûr heye û di bîr û mejiyê mirov de şopina dibile û zû zû nayete ji bîr kirin.

[2] Sinçî: Bi mana exlaq û seciyê ye. Yanî xesletên mirovan ên zikmakî û ên destexistî. Sinçî xwerû kurdmancî ye. Ma te li sinçiyê wî nihêrî, ne tu sinçî ye.

---

# BINGEHÊN

## GRAMÊRA KURDMANCÎ

— 18 —

125 — Rengdêrên wesfîn li gora bastûrên xwe an sade an hevedidanî ne. Ên sade ew in ko di zimên de şiklekî wan î sabit heye û ji bêjeke bi tenê têne pê. Wek: sor, girtî, niviz, qels, nerm, xurt, şikestî, weza, dirêj, kurt, fireh, pehin, bilind, teng h.d.

Ên hevedidanî ew in ko ji bêjeyên têvel tênepê. Ev rengdêrên ha di zimanê kurdmancî de bê pivan in û di dema xeberdan an nivîsandinê de hinên din, ji nû ve têne saz kirin. Mina: pozberan, çavbelek, dilteng, xweşcivat, nûza, dilşikestî, kêmxew, sorhoz, warxweş, destvala h.d.

126 — Bi gelemperî rengdêrên wesfîn di komekê de bi navdêrên xwe ve peyda dibin. Lê gava navdêrên wan ne bi wan re ne, yanî ew ji komekê ketine, hingê navdêr bi veqetandekên ko rengdêr bi wan ve dibûn têne nimandin. Herwekî di madeyên (64,68)an de hate gotin veqetandek dikeve pêşiya rengdêrê û wêzîfa pronavê dibîne. Heke di qisetê de, ji berê de, çêl li hêsp û mehînê hatî be kirin, hingê mirov li şûna ko bibêje: « ez hespê boz dibînim » an « ez mehîna boz dibînim » dikare bibêje: « ez ê reş dibînim » û « ez a reş dibînim »

127 — Lê carina navdêr ji qisetê yekcar dikeve û rengdêr wek pronavekê li şûna wê radibe Hingê rengdêr, ji ber ko wezîfa navdêrê dibîne û wesfê xwe ê rengdêrîn winda dike, wek navdêrê têtê tewandin û veqetandek bi paşiya wê ve dibe.

Stranê gotiye:

Tirsim bimrim ne bînim esmera min
Riya Mêrdînê bi kaş e, delala min.

Bêjeyên « esmer » û « delal » her du jî rengdêr in. Lê ji ber ko li hire bûne navdêr û şanî jin an keçikekê didin weqetandeka mê bi van ve bûye. Heke me malikên stranê vegerandin esilên wan, hingê navdêr vedigerin şûnên xwe û rengdêr bi serên xwe û bê veqetandek dimînin:

Tirsim bimirim ne bînim yara min a esmer
Riya Mêrdînê bi kaş e, yara min a delal.

---

## HEYRAN

Heyran îşev meçe, li hire be
Wê bê pêşiya beyranê min nijda şemer û ereb e
Wê te bikujin xelk ê bêjin Eyşmelana reben
[ biye serê loman û sebebe
Ser serê min hat heyran mehvanê paşmexrebê.
Heyran Xwedê xerab bikê keşanê
Xaniyê Mîr Ehmedê min raserî kolanê
Minê divê ezê şeva nîvê şevê herim tewafa
[ xal û nîşanê gerdenê
Devê min şemitî ketî bî ser lefika kitana
[ Eyşmelanê.
Heyran tu î xirab î
Tu li derê mala dabê min rûdinî qet ranabî
Tu we bikî, ezê bêjim bab û brayên xwe ev
[ sêwiyê heyrana ji min venabî.
Heyran digo keçikê ez xirab im
Ez derê mala bebê te rûdinim qet ranabim
Ti nebejî bab û brayên xwe, ti bêjî xunkarê
[ dînê islamê ez ji te venabim.

## COUTUMES ET TRAITS DE MOEURS

124 — Em bûne kirivê hev, xwîna me li dawa hev ketiye.

Nous voilà « kirîv », le sang de chacun de nous a taché le pan du vêtement de l'autre.

Le « kiriv » est celui qui tient dans ses bras l'enfant que l'on est en train de circonscrire. La « kirivatî » établit entre les membres des deux familles intéressées ( ils deviennent « kirîv » les uns par ropport aux autres ) des liens analogues à ceux de la parenté par le sang.

125 — Konê reş kêmaniyê qebûl nake.

Tente noire ne souffre aucun manquement.

Allusion à l'hospitalité dont les nomades sont si fiers.

126 — Mêvanê yekî, mêvanê gundekî.

L'hôte d'un habitant est celui de tout le village.

127 — Şal û şapik şiklê saxê.

Pantalon et gilet de Chakh,

( Les tissus de Chakh sont renommés. )

128 — Reşik pehin, devî xwar.

Les espadrilles larges et la bouche de travers.

129 — Bavê keça siltan e.

Qui a des filles est un roi.

( Il peut en effet faire le bonheur ou le malheur des prétendants. Allusion aux difficultés qu'éprouvent dans certaines régions, les jeunes gens à se marier, en raison de la dot élevée qu'ils doivent verser au père de la fiancée ).

130 — Bê şêx û pîr meçe diwana mîr ko tu nekevî halê feqîr.

Sans cheykh ni pîr, ne va pas chez l'émir, si tu n'en veux pâtir.

( Il ne faut pas s'adresser aux grands sans être recommandé. Les cheykh et les pirs, chefs religieux servent souvent d'intercesseurs ).

131 — Çavzer hebin, çavreş pir in.

Pour peu qu'il y ait des yeux marrons des yeux noirs sont trop nombreux.

( Les yeux marrons, considérés comme un signe de beauté, sont, au Kurdistan, plus rares et par conséquent plus appréciés que les yeux noirs ).

132 — Dawet ferıkî, berbûrî hetikî.

Après la noce, la « berbûri » a honte.

( C'est à dire : chaque chose en son temps. La « berbûrî » est la matrone qui accompagne la mariée jusqu' à la chambre nuptiale ).

133 — Dewletiya bi lez, rez û pez.

Fortune rapide: vigne et moutons.

( Au Kurdistan, la culture de la vigne et l'élévage du mouton permettent de réaliser de gros profits, les bonnes années ).

134 — Dijminê bêv nabê dostê lêw.

L'ennemi du père ne devient pas l'ami du fils.

( Allusion aux querelles héréditaires qui divisent les tribus kurdes ).

135 — Ez mineta axê jî li xwe nakim.

Même envers mon agha, je ne veux pas avoir de dette de reconnaissance.

136 — El êla min e, nav navê Bişarê Momin e.

C'est ma tribu, et le renom revient à Becharé.

( Se dit en parlant de quelqu'un qui profite du travail des autres ),

137 — Go ziyaretê: « min gelek cara bi derewa bi te swînd xwariye ». Go: « Mi jî gelek cara mala te xerab kiriye, lê tu bi xwe nizanî. »

Il dit au sanctuaire: « Souvent j'ai fait sur toi de faux serments! » Le sanctuaire répondit: « Et moi, je t'ai souvent joué de mauvais tour à ton insu! »

( Les ziyaret sont les sanctuaires locaux — tombeaux ou cénotaphes de saints, sources, grottes etc. — qui avoisinent la plupart des villages kurdes. C'est par eux que l'on jure. Beaucoup sont entretenus par de saints personnages qui en perçoivent les revenus et recueillent les offrandes des pélerins — d'où la réponse du sanctuaire dans notre proverbe. )

138 — Gundek e, gudorek e.

Un village, un melon.

( Se dit d'un repas où les invités sont trop nombreux et le menu trop maigre. )

139 — Gundê bê rez, û konê bê pez, û mêrê dibê ez û ez, hemî ne tu tişt in.

Village sans vigne, tente sans moutons, homme qui dit: « moi, moi ».

( Tout cela ne vout rien. cf. No 133 ).

140 — Heçî bi mal e, bi xwaltik û xwal e.

Qui a une maison a aussi tantes et oncles maternels.

( Qui a une famille a quelqu'un pour le soutenir ).

141 — Heçî jinekê bîne, divê tûrek pereyê wî an barek derewên wî hebe.

Qui prend femme doit avoir un sac d'argent ou un ballot de mensonge.

142 — Her kezîzerek simbêlsorek li pey e.

Derrière chaque chevelure blonde, il y a une moustache rousse.

( La chevelure blonde pour les femmes, et la moustache rousse pour les hommes, constituent autant d'attraits physiques ).

143 — Hirç û govend, rovî û sûk, koçer û pivazê tirşk.

L'ours et la danse, le renard et le marché, le nomade et l'oignon confit.

144 — Jina werin ji mala, xwarzî bên ser xwala.

Prends femme dans une bonne famille, les neveux ressemblent à leurs oncles maternels.

145 — Kerê got: « Xwedê kir ê ez ker im, ne koçer im ? »

L'ânesse dit: « Grâce à Dieu, je suis une ânesse et non pas un nomade! »

( Allusion à la bêtise proverbiale des nomades ).

( A suivre ) TAWÛSPARÊZ

---

Kiriyariya Hawarê 500 Qirûşên Sûrî

Xwedî û gerînendeyê bepirsiyar: Mîr Celadet Alî Bedir-Xan . Şam—Sûriye

Directeur Propriétaire: Emir Djéladet Aali Bedir-Khan, Damas-Syrie

ŞAM — 1942 — ÇAPXANA SEBATÊ .

SAL 10
HEJMER 49
SÊŞEMB
15 ÎLON 1942

# HAWAR

ANNÉE 10
NUMÉRO 49
MARDI
15 SEPTEMBRE 1942

KOVARA KURDÎ ✦ REVUE KURDE

DI VÊ HEJMARÊ DE



## TEFSÎRA QURANÊ

178 — Kafir bila kêfxweş û dilgeş mehin û ji xwe re ne bêjin ko ev jiyîn û emrê dirêj û mihleta mezin, ji bo wan çak e. Me ev tişt da wan da ko gunehê di wan zêdetir bin. Ew, di roja pişdawiyê de bi serkeşiya xwe heyran û bêçare dê bimînin. Ji bona wan ezabekî giran û cegersûz heye.

179 — Xuda mirovên bawermend heta wextekî di tengasiyê de dihêle herwekî tengasiya we a hazirî, da ko tê de êdî qenc û xirab ji hev veqetin; û ne qesda Xwedê ye ko ew ji we re nependiyên hikmeta xwe bide zanîn. Lê Xuda li gora daxwaza xwe, ji hin pêxemberên xwe re hikmeta veşartiyên xwe dide seh kirin. Baweriya xwe bi Xuda û bi pêxemberên di wî bînin. Heke hon bawermend in û ji Xudayê xwe tirsiyar in, bizanin ko Xwedê sewabeke mezin digihîne we.

180 — Divê mirovên çavteng û destgirtî xweş bizanin: Heke ew ji malê ko Xuda da wan, di riya Xwedê da na din, ew çavtengiya wan bi kêrî wan naye û ew ji wan re ne tu xêr e, lê belê ew birînek e, xirabiyek e.

Malê wan di roja pişdawiyê de wê bibe nîrê stoyê wan ê gunehkar. Mîratxwerê erd û ezmanan Yezdan e, herkes dê wê here û ew dê bimîne. Xuda ji emelên we xeberdar e.

181 — Xuda gotina wan bihistiye; wan digot: Xuda belengaz e, em dewlemend in. Em vê gotinê qeyd dikin û ji bîr na kin ko wan pêxemberên Xuda bê rê kuştine. Emê wan bêxine dojehê û ji wan re dê bibêjin: lezeta agirî tam bikin; çawan e?

182 — Ev dê bibe zecayê kuştina pêxêmberên Xuda, an ne, Xuda bi evdên xwe re ne zalim e.

183 — Mezinên cihiyan digot: Mêze bike, Xuda emrê xwe bi me da, divê em heta ko pêxemberekî welê bê ko gava em qurbenekê şerjê dikin û berdidin mezelekê, bi emrê wî ji ezmên agirek datê û wê qurbanê dişewitîne; bawariya xwe bi tu kesî neyînin.

Pêxeberê min... bêje wan: Berî min, ji we re bi delîl, hicet û mûcizan, her wekî hon dibêjin pêxember hatin. Heke hon rastdil in, çire we ew kuştin?

184 — Heke ew bi gotina te qaîl nabin û derew bi alî te ve didin, tu xemdar mebe, ji ber ko ew bi gotina pêxemberên berî tejî û bi kitêb û hicetên Xwedê ên din jî qaîl ne bû bûn.

185 — Her nefs lezeta mirinê wê tam bike. Di roja pişdawiyê de her kes li gora emelê xwe berpirsiyar dibe; yên ko ji ezabê dojehê xelas dibin û digehin nîmeta bihuştê çiqas bextiyar in. Jiyîna dinyayê xew û xewnek e û xapandina demekê ye.

186 — Xuda we, bi can û malê we dê biceribîne. Yên ko ji wan re berî we kitêbên Xuda hati bûn şandin, yanî xudankitêb û dîn-nezan jî; bi çend awayî wê bêne qehirandin û ezibandin. Heke hon sebr dikin û ji Xudayê xwe tirsiyar dibin û di riya rastiyê de pê didin erdê, êdî aşikar dibe ko hon, li gora emrê Xuda meşiyane.

## MEMOZÎNA EHMEDÊ XANÎ

— 6 —

SEBEBA NEZMA KITAB E BI VÎ EZMANÎ DI SÛRETÊ ŞEKWAYA JI DEWRANÊ Û GILIYA JI EBNAYI DI ZEMANÊ KO LI BAL WAN YEKSAN E HINERA DANAYÎ DIGEL EYBA NADANÎ

Xanî ji kemalî bêkemalî
Meydana kemalê dîte xalî
Hasil ji înad eger ji bêdad
Ev bidhet e ger xilafi mi'tad
Safî şemirand vexwar dirdî
Manendi derî lisanî kurdî
Înaye nizam û intizamê
Kêşaye cefa ji boyî amê
Da xelk ne bêjitin ko ekrad
Bê me'rifet in bê esl û binyad
Enwa'i milel xudan kitêb in
Kurmanc b'tenê di bê hesêb in
Hem ehli nezer nebên ko kurdmanc
Eşqê ne kirin ji bo xwe amanc [1]
Têk da ne di talib in ne metlûb
Vêk ra ne mihib-bin ew ne mehbûb
Bê behre ne ew ji eşqbazî
Farix ji heqîqî û mecazî
Kurmanc ne pir di bê kemal in
Em-ma di yetîm û bê mecal in
Filcimle ne cahil û nezan in
Belkî di sefîl û bê xudan in
Ger dê hebiwa me jî xudanek
Alîkeremek letîfedanek
Ilm û hiner û kemal û iz'an
Şi'ir û xezel û kitab û diwan
Ev cins biba li ba wî me'mûl
Ev neqd biba li nik wî meqbûl
Min dê elema kelamî mewzûn
Alî bikira li banî gerdûn
Bina ve riha Melê cizêrî
Pê hey bikira Elî Herîrî
Keyfek we bida Feqihê teyran
Het-ta bi ebed bimaya heyran
Çi bikim ko qewî kesad e bazar
Nînin ji qimaş ra xerîdar
Xesma ko di vê esir da himyan [2]
Maşûq û hebîb e bo me hemiyan
Yanî ji teme' dirav û dînar
Heryek ji me ra we bûne dildar
Ger ilim temam bidî bi pûlek
Bifroşî tu hikmetê bi solek
Kes naketa meyterê xwe Camî
Ranagiritin kesek Nizamî
Wextê ko me dî zemane evreng
Filcimle li ser diravî bû ceng
Hez kir me bibîne kîmiyager
Gava ko me dî ne bû miyes-ser
Tesfîye me pêlekê emel kir
Tesfîyei cewherî dexel kir
Qelbê me ne kir qebûl hîle
Qet bû xerez û ne bû wesîle
Din çû û ne ket bi dest me dînar
Paşê ji neçarî bwîne sef-far
Sifrê xwe î xef me eşkera kir
Qirtasiye bû me lê dia kir
De'wet kiriya hi sidq icabet
Bû wasitayî qezayî hacet
Ev pûl egerçî bê beha ne
Yekrû ne û saf û bê behane
Bê hîle û xurde û temam in
Meqbûli miamila ewam in
Kurmancî ye sirf e bê guman e
Zêr nîne bibin sipîdeman e
Sifrê me î sor e aşikar e
Ziv nîne bibin ko kemeyar e
Neqdê me mebêje kem beha ye
Bê sik-kei şahî şehrewa ye
Ger dê bibiwa bi derb menqûş
Ne dima wihe bê rewac û mexşûş
Mehbûb e bikes ne namzade
Lew bexti siyah û namirad e
Qirtasiyeya me bê penahan
Bê derbi qebûli padişahan
Me'lûl e li ba gelek eliman
Meqbûl e li ba gelek hekîman
Lê hakimî wextî î me'rifetnak
Mesmû' ne kir bi sem'i idrak
Mîrê ko bi navê mirza ye
Mehza nezera wî kîmiya ye
Qelbî di zexel diket bilûrî
Pûlî di dexel dikit filûrî
Sed bar hebin filûsi ehmer
Derhal dikit bi yek nezer zer
E'lay dikit bi qehrî edna
Ednay dikit bi litf e'la
Paşan digirit wekî esîran
Aza dikitin wekî feqîran
Her roj hezar bê newayan
Her lehze bi litf sed gedayan
Zengîn dikitin bi destî him-met
Hikmet ew e nakitin çu min-net
Ger dê wî nezer bida me carek
Iksîri tewec-ciha mibarek
Ev qewl hemî dikirne eş'ar
Ev pûl hemî dibûne dînar
Em-ma nezara wî zêde am e
Lew xas nezer ji dil ne da me
Ew rehmeti xas e bo ewamî
Yareb tu bidî wî her dewamî.

---

[1] Nakeve serê mirov ko Xanî xelet bibêje û xelet binivîsîne. Digel vê hindê di vê misrehê de «eşqê» xelet e. Ji ber « eşq » li hire bireser e, û bireserê lêkerên gerguhêz di zemanên borî de nayine tewadin. Ji lewre şiklê rast « Eşq ne kirin ji bo xwe amanc » e. Lê ji bo timamkirina weznê mirov dikare bibêje: Wan eşq ne kirin ji bo xwe amanc.

[2] Himyan bi mana « heban » e; û li hire bi mecazî cizdanê perê û pere bi xwe' ye.

---

KURD Û CIVAT:

## CIVAT

— 1 —

Di kurdmancî da ji kombûn û civîna çend mirovan ra civat tê gotin.

Lê ji gutlek mirov ra wê çaxê civat dibêjin ko ew gutil bo cibanîna dozekê an galaz û dehkekê civiya be; û xurtî û serdestiya libatan li ser hev hebe. Bi kurtî: « raman û armanceke civatê hebe »

Eger raman û armanc ji civatê dûr be ewê bête gotin ko « dehbe ji pev ra dijîn û dixebitin. »

Lê ne wisa ye; xebat û civîna dehbeyan bi ajotineke nehişî ye. Pêşiyên wan çawan bûn ew jî wek wan in û ewê her we bin.

Civîna mirovan bi heş û jîregiyê ye; havila şehrazayiyê ye, bi zanîn û bingeb e, her civîneke mirovan pêşveçûnek e. Eger civatên mirovan jî wek yên dehbeyan bi neheşî biwa; bêguman ev pêşveçûna wisa mezin pêk ne dihat û emê wek pêşiyên xwe di şikeft û qulên dar û beran de bûna. Jê pêve civatên mirovan xweyî dîrok in. Ji dehbeyan ra dîrok tune ye.

Ji Dehbeyan cihê bûneke mirovan dî heye: ko mirov bi destkirin: anî tiştan bi heşê xwe dibînin û bi destên xwe saz dikin.

Mirov; bi destkiran kar û xebatên xwe hêsan dikin: wek gîsin. Gîsin niho li pêş çavên me tiştekî pir piçûk û kêm bêja ye. Lê gava em kûr binêrin hêsaniyeke mezin bi me ra dike. Her destkir li gora karê xwe pir an hindik hêsaniyê dike.

Hêjayiya civatê yek jê ev e ko destkiran li nik xwe diparêze û awayê xebata wan ji

# KENEDIYÊ

## PÊŞÎN, YÊ KO PÊ LI ERDÊ FRENSÊ KIRIYE

Herwekî xwendevanên me dizanin û di Rewşa dinyayê de ji wê bixwînin ingilîz û hevalbandan li 19ê Tebaxê esker derêxistine erdê Frensê, mintiqa Diyêpê. Diyêp di Behira-Manşê de bendereke frensizî ye. Li vê seferê eskerên ingilîzî, emêrîkanî, kenedî û frensizên şerevanî pardarî kirine.

Balafirvanekî emêrîkanî bi navê Jozêf Barûland ji di vî şerî de hazir bûye. Barûland keleheke firolek tajot. Keleha firolek texlîtek balafireke bombavêj e. Ji ber xurtî û mezinahiya wê ev nav lê kirine û jê re keleha firolek gotine.

Barûland di heqê vê seferê de bendek nivîsandiye û tê de gotiye:

Pênc kelehên firolek pardariya vê seferê dikirin. Ji balafirgeheke Ingilterê ew bi nizameke welê rabûn û bi rê ketin ko mirov lê heşmetkar dima. Kelehên firolek di ortê de bûn. Herçî spitfeyer û nêçîrvanên frensizî, kenedî, polonî, belçîkî û holendî dor li wan girtî bûn. Ev refê teyrên hesinîn gelek ne borî xwe gihande ser erdê Frensê. Herkesî ji berê de wezîfa xwe nas kirî bû. Kelebên firolek di bin hefadiya nêçîrvanan de bi ser balafirgehên Abêvîlê de girtin û ew dan ber bombeyên xwe. Ji bona ko balafirên elemanî nikarin bi firê bikevin û bi ser eskerên me yên ko dikirin dakevin bejê de herin û daketina wan biwarqilînin.

Gava me bi ser balafirgehên Abêvîlê de girt saet bû bû heşt û nîv. Qederê bîst deqîqan me bombeyên xwe barandine balafirgehên dijmin. Di vê navê de bêtelek, yanî telêgrefeke bêtel, gihaşte me. Bêtêlê digot ko eskerên me gihaştine peravê û balafirên elemanî bi ser wan de girtiye û şerekî hewayî di navbera balafirên her du aliyan de dest pê kiriye. Me jî berê xwe da wê hindavê. Di ser peravên Frensê re qederê 900-1000halafir giha bûn hev, dirêjî hev dikirin, pêşî ji hev distandin û li hev didan. Hew te dît balafirek wek teyrekî baskşikestî ber bi jêr dibû, xwe noqî avê dikir; an di toza reşahiyê de dibû ewrekî ecacê û winda dibû. Lê herçî kelehên firolek tu tişt bi wan ne hatî bû. Ji ber ko ew qenc dihatine bemandin û berikên ko ji dûr ve dihatin nikarî bûn di zirhên wan re derbas bibin

Di şerê hewayî de rexma ko xesarine mezin gihaştî bin hevalbendan jî ew serdest bûn. Lê divêt mirov mikur bêt ko balafirên elemanî tev de ne ketî bûn vî şerî. Birekî wan bi ser vapor û filûqeyên me de girtî bûn û dikirin bendî daketina wan bibin. Di destpêkê de miwefeq bûne jî. Lê topên stolê balafirên elemanî bêgav hiştin ko ew bilind bifirin. Bi vî awayî ji tesîra wan kêm kirin.

Saet bû bû neh û bîst, min dûrebîna xwe li qeraxa behirê rast kirî bû. Du balafirên me û didowên elemanî li hev didan. Vaporeke piçûk di bin himayeta bîst balafirên emêrîkanî, ji tîpê lîbêrator, nizingî li bejê kirî bû. Balafirên neyar dirêjî vapor û balafiran dikir. Min bihina xwe di xwe de girt. Bombe diketin dora vaporê û stûnine avê ji behirê ber bi ezmanan rndibûn. Di vê navê de, min dît ko gulokine reş ji vaporê li behirê gêr bûn. Ma ew ne eskerên me bûn. Min dûrebîna xwe di çavên xwe re dikir; qey bi şidandina dûrebînê minê çêtir bidîta.

Ez ne şaş bûm; ew eskerên me bûn. Belê eskerekî kenedî bi destî ve tifingekî timatîk, bi qayîşa navtengê wî ve bombe, pê li reşahiyê kirî bû û qesta pêş dikir. Ê kenedî qederê du deqîqan bi tena xwe bera dijminên ko ji çeperan agir dikirin da û ajote ser wan. Dijmin dikir, ne dikir ne dibingafte wî. Di pey wî re rewtekî kenedî dakete bejê û dirêjî çepera dijmin kir. Min kenediyê xwe nema didît; ew tekilî hevalên xwe bû bû Lê piştre min seh kir ko kenediyê min bi destbombekê depoxaneke dijmin berhewa kirî bû. Li ser vê yekê dijmin terka çeperên xwe ên pêşîn da bû.

Piştî ko em vegeriyan Ingilterê min li kenediyê xwe pirsî. Kenediyê min bi birînine sivik birîndar bû bû û keti bû xestexanê.

CEMÎLÊ TACDO

---

libatan ra rava dike. Bê guman e ko civat ne biwa parastina destkiran ne diçû serî. Hertişt ji wendabûn û mirinê ra heyirandi bû.

Me ji van pirsên jor ev pêjor yanî netice derxist ko civatên mirovan û dehbeyan wan ji hev dûr dixe û warekî bêja û bilind ji civanên mirovan ra çêdike.

1 — Civat, havila raman û arınancê ye ko bingeha wê ji heş û jîregiyê tê.

2 — Xweyî dîrok e anî civat bi tevgera xwe jîna xwe heman heman ji xwe ra dîrokekê çêdike.

3 — Destkirên libatên xwe diparêze û ji xelkê ra awayê xebata wan rava dike.

(dûmayîk heye) REŞÎD KURD

## TELQÎNA ÊZDIYAN

**Mirld, kesol** Ser te dar e, bin te dar e; Wê beye ser te melek Ezrail û Cebrail e. Wê ji te bike pirs û sewal e. Nebe nebe, tu jê biki fikar e.

Mirid, kesol Telqin e, asin e. Wê beye ser te nikl û nikin e. Wê pirs bike, bêje: tu ji kijan din e. Tu bêje ez î êzdi me, bi şêx û bi feqir û merebi me. Şêxê min şêx Adi ye, melek Ferxedin, melek Secadin e, Şêxê Şemsaniya, şêxê Şêxisna, şêxê Ebûbekra ye, şêxê Şêteriqa ye; her du kurên Sitiya Zin e. Li ser kaniya sipi rûniştî ne, hec û tewafa mêrê êzdi ne.

Mirid, kesol Telqin e, asin e. Wê beye ser te nikl û nikin e, Wê pirs bikê, bêjê tu ji kijan din e. Tu bêje ez î êzdi me. Bi Mûsa pêxember re derketime serê Çiya Tûresin e. Bi Îsa pêxember re çûme Quds û Xelil e. Bi Mihemed pêxember re çûme Meke û Medine.

Mirid, kesol Ser te kevir e, bin te kevir e. Wê beye ser te melek Ezrail û Cebrail e. Deyne ber wan Mishefa-reş û nan û penir e. Eger pê qail ne bûn, rabe bi gopalê feqir e.

Mirid, kesol Ewil bi dev bû, paşi wê bibe bi ev. Wê rabê Madi, wê hilinê bang û selawatê, wê xirab bikê dêr û mizgeft û qadi; û kesek ne bejê bi Îsa û Mûsa û Mihemed. Xelk wê bibêjê bi siltan Êzi û siltan şêx Adi.

Amin, amin Xwedê arikarê din.

---

## MARŞA CANBÊZARAN

### JI SEYDAYÊ CEGERXWÎN RA

Ez beni, piştî ko me ev marş berpeyî we kir divê tu me nekî dizê rezê xwe. Gelek silav û xweşî.

Kurdê gelparêz, Ji bo serxwebûn
Divê birjini, Bi comerdi xwin
Him divê xebat, Ji bona welat
Da bibin Xudan, Rêzik û qanûn
« Serbilindi dewlemendi divêtin xebat »
« Bê dijwari bê xwinxwari em naçin welat »
Me armanc yek e, Girtina welêt
Ji dil me diçe, Sed agir û pêt
Çavên xwe veke, Hey xortê ciwan
Neyar ne bişt xwin, Di rehên me mêt
« Serbilindi dewlemendi divêtin xebat »
« Bê dijwari bê xwinxwari em naçin welat »
Divê hon her yek, Mina gurê har
Singa xwe vekin, Bajon ser neyar
Min ji we navê, West û rawestin
Di rêya welêt, Em giş canbêzar
« Serbilindi dewlemendi divêtin xebat »
« Bê dijwari bê xwinxwari em naçin welat. »

OSMAN SEBRÎ

## LI PÊŞBERÊ YARÊ

Delala min!

Di rûpelên jina xwe da ev bû cara didowan ko bi ber pêlên hezkirinê dikevime. Bê şivişk nifşa paşin, perê tava teyroka te li min da.

Di vê da ez nizanim gelo heqê te û min li ser min e; an heqê min û gazindan li ser te! Divê ko vê yeka han tu ji hev bi derêxi...

Ya ko ez dizanim, heke ne ji te bûya; bilindi û ziraviya hezkirinê min ne dizani, bila ji Melê Cizeri her bikirana zarin...

Heke êş bi xwe ne di canê mirov da bit, bi zarina kesan mirov agahi qasa êşê nabit. Di vê yekê da mineta te li ser min.

Disa heke ne ji te bûya, ev derdê malkambax û nih ji min ra. li kû dihat? Di vê da ji gazinda min li te.

Erê, ev bû cara didowan ko pêlên hezkirinê min davên ber xwe û dibin; lê kû da dibin, vê derê ez ji nizanim!...

Hin ez ji ber pêlên hezkirinekê ( hezkirina welêt ) nefilitî bûm ko, bi ber pêlên ya din ji ketim. Nizanim ko ev rasthatin ji bextçakiya min e, an ji bextereşiyê?.. Divê, ez vê yekê ji feylesofeki evini bipirsim.

Bi tinê di dema pirskirinê da min gotinek heye, nizanim ko çiqas der wê heq biêxe destê min?! Ew ji ko min hez kiriye; lê ez tê bi dernaxinim, ka hemberê vê hezkirina xwe hatime hez kirin, an na?....

Daylana min! ez naxwazim wek evinkerên mayi pesna rûçik û sinçiyên te bidim, Heke min welê kir, dûr û nizik, pir û hindik ez ji dikevim ser şopa wan. Di dinê da ya ko bi min xweş êt ew e ko: riya min ji ya hemi kesan cida be. Bi tinê, ji bona te min pesnek heye ko ew ji: her tu daylana min î.

Zeriya min! heke di vi zemani da baweriya min bi rabûna miriyan tine bûye ji, ji iro pêve min baweri bi wê yekê heye.

Dergehê dilê min, yê ko weke tehtan bi tu tilisman venedibûn, nêrineke te ew dergeh bi gengazi vekir. Canê min, yê ko her digel jinê şer bû û ji hev bêzar bû bûn; heyina te ew ji hev ra kirin yar.

Heke Mesih miriyên xwahişgerên jinê divejandin, te xweşeki xwahişgerê mirinê li jinê vegerand. Erê, çiqas ko tu ne Mesih bi ji, bemin tu mesihi yi.

Ez di çavên te da kaniya jinê dibinim. Heke tu bi xwe ne jin bi ji, teqez tu fehreşteya jinê yi.

OSMN SEBRÎ

# SÊ SALÊN ŞER

## 1 ÎLON 1939 — 1 ÎLON 1942

Ev şerê ha, şerê ko îro dinya tê de kefteleftan dike û li hev dixe li 1ê Îlona 1942an gihaştiye sala xwe a sisiyan û pê li a çaran kiriye.

Heke mirov bûyerên şerê 1914-1918an gihandine bûyerên sala 1939an dibîne ko ev şerê ha ji dûmahika şerê 1914an pêve ne tu tişt e.

Di şerê 1914an de zora elemanan çû bû û Elemanyê bi miaheda Sêvrê şertên sondxwariyan qebûl kiri bûn. Sondxwariyan Elemanye û hevalbendên wê, nemaze Ewistiryayê ji çek kiri bûn û cexrafya Ewropayê bi kem kirina hin dewletan û bi zêdekirina hinên din guharti bûn. Sondxwariyan imperatoriya Ewistiryayê yekcar ji ortê rakir û hin erdên Elemanyayê jê weqelandin û mistemlekeyên wê jê standin.

Elmanye bi vî halî razî bû bû, Heta roja ko wezîrxariciyekî wê, Strêseman, di civatmiletan de bi nimînendeyên Frensê û Brîtanyayê bi dev xweş kir û bû qehremaneke aşî û bistehiya dinyayê. Stêreseman di pişt vê perdeyê re ji welatê xwe re, ji bo Elemanya mezin xebate ke zor dixebitî.

Ji milêkdin Hitler bi teşkîlatên xortan, ji Elmanyayê re ordiweke bêçek lê talimkirî saz dikir û xortên Elmanyayê di dora xwe de digihandine hev. Hitler bi xortên xwe ên talîmkirî di nav Elemanyayê de hikûmeteke din ani bû pê. Di sala 1933an de Hitler bû serekwezîrê Elmanyayê û piştî mirina Hindenbûrg Hitler serekwezîrî û serekdewletî di şexsa xwe de gihandine hev û navê fûrer, rêberê elmanan li xwe kir.

Sondxwariyan tevgerên Hiter didîtin û bivê nevê bira armancên Hilter dibirin; lê sênc danetanin tevger û kirdeyên wî. Carê ko Hitler mixalefeta miaheda Sêvrê dikir sondxwariyan xwe digihandine wî an nimîvendeyên wî, pev re didan û distandin, li hev dihatin û di her lihevhatinê de, tiştê ko Hitler digot diçû serî. Di vê navê de ji destê Hitter ê rastê, Göring, ordûke mezin saz dikir û febrikeyên elemanî her texlît çek û posat, tang û balafir çêdikirin. Sondxwariyan ne digote Hitler tu van çek û posatan ji boyî çi û ji bona kê çêdikî; te çi daye ber çavên xwe. Belê sondxwariyan ne ev digotin ne jî xwe kar dikirin.

Bi vî awayî Hitler yeko yeko pê li madeyên miaheda Sêvrê kir û ew miaheda çirand, ji nû ve esker xiste mintiqa Rûrê, yekîtiya Elmanyê û Nemsê îlan kir, birên welatê xwe yên ko jê hati bûn birin bi şûn de vegerandin, dewleta Çêkoslovakyayê ji ortê rakir û ew erd kire du wilayet û ew xistin bin himayeta Elemanyayê. Sondxwariyan ev tişt hemî qebûl dikirin û digotin eman aşitiya dinyayê bila xerab nebit, û agir bi barûtê nekevit.

Dor gihaşti bû mesela Danzigê. Hitler dixwest di navbera Danzig û erdê elemanî û di erdê Polonyayê re rêkê bidit çêkirin. Polonya pê qail ne dibû. Li ser vê yekê li 1ê Îlona sala 1939an ordiwa elemanî berda erdê Polonyayê û vî şerê hêeman dest pê kir û ev sê sal in bê etlahî dom dike û kes nizane ewê kengê xelas bibe.

Di sala sisiyan de kirdeya giranetir şerê Japonyayê ye.

Li 7ê Kanûna-paşîn sala 1941ê japonan ji nişkekê ve bi ser giravên Emêrîkayê de girtin û derbeke xurt li stola wê dan. Bi vî awayî Emêrike jî rast bi rast kete şer û agirê şer xwe gihande dinya nû jî.

Bi hênceta vê dorsalê Hawar lîsta jêrîn belav dike û kirdeyên vî şerî ên giranetir

# DÎWANA MELÊ

— 33 —

Îde û her kes ji dîdara te lê pîroze îd
Ez tenê mehrûmî didarim bi sed menzel beîd
Her seher dê bêjim ez canan hi ahan ra ji dil
Barekel bari bi îs'adin eleyha yewm îd
Dergehê lutfa te xanim ma li mehrûman vebî
În-ne kelben basîten dehren ziraen bîlwezsd
Pîre merd im aşiq im îro mirada min bibexş
Ya hebibî ya miradî ya muna qelbil murîd
Ferre eqlî mîn lehîbîn mislî Bazîn ew Îqab
Zabe rûhî mislî ma inhelle fîn naril celîd
Dem'u eynî min bekaîn mislu main fî sikûb
Naru qelbî mîn xiramîn fî deramîn fîl weqîd
Dil ji ber narê mecazê bil heqîqet bû preng
Naru qelbî fî hewaha mîslî narîn ûlhedîd
Key xelas ez dûzex hîcra te ya bim ey ciwan
Her nefes dared sela û ne'ire ê hel min mezîd
Kî dizanit min ji rimbazan dema oxilme tên
Têne dil sed rim ji wan û sine têne sed cerîd
Min ji seffênan ji nîva meqtelê rim têne dil
Lê li wan destan nehin Xwîn wî xezaye ez şehîd
Mishefa husn û cemalê sûreta xal û xetan
Ma telewna xeyre herfîn la bi qur'anîn mecîd
Gerçi her daîm ji mihra neynika dil bedre min
Wek hilala subhê ez carinan têm nabedîd
Ma bi l'lên canfeza navê me hînit carekî
Bid-dna bel-lix tehiyatî li Selma ya berîd
Tu j'melê botî bipirs esrarê eşqê hel dîket
Vê muemayê çi zanin sed mela û musteîd
Er hi kuştin wer bi hiştin emr û fermana te bit
Ehmedu ebdun reqiqun waqîfun beynel ebîd.

dûtine bira xwendevanên xwe.

Xwendevanên ko vê lîstê bixwînin ewê bibînin ko eleman di destpêkê de, serdest bûn; beye ko hetanî îro jî, di gelek deran de serdest in. Le û nemaze piştî ko Ûris û Emêrîke jî ketine şer îşê elemanan zehmet bûye. Zeman ji elemanan bêtir hevalê ingîlîzan e.

## SALA 1939

### ÎLON

1 — Elemanan direjî Polonyayê kir û qewetên mêkanîkî ên elemanî şerê xwe ê brûskîn, ji bo cara pêşîn di vî welatî de ceriband. Ordiwa polonî ya ko hêj seferberiya xwe temam ne kiri bû, di tu deran ne karî, weke xwe şerê elemanan bike û li 27ê Îlonê Polonyê bê qeyd û şert teslîm bû.

3 — Ingilîz û frensiz bi temînata xwe ve meşiyan û li Elmanyayê îlanherb kirin.

17 — Piştî ko elemanan ordiwa polonî ji hev de xist, ûrisan jî direjî Polonyayê kir û digel elemanan ev welat lêk vekirin.

### ÇIRIYA PAŞÎN

30 — Ûrisan direjî Fenlandiyayê kir. Rûsya mezin midekî direj bi Fenlandiya piçûk mijûl bû û zora wê bir. Gelo hingê ûrisan ne dixwest qeweta xwe şanî bidin. Li 13ê Adara 1940î di navbera ûris û fenlandiyan de aşî çêbû û Fenlandiyê ji nîvroyê welatê xwe hin erd dane Ûris.

## SALA 1940

### NÎSAN

9 — Di yek rojê de elemanan avête ser Norvêj û Denîmarkê. Denîmarkê dest hilnanî û teslîm bû. Norvêjê li ber xwe da û ingilîz û frensiz çûn hawara Norvêjê. Di behir û hewan de di navbera eleman û hevalbendan de şerin çêbûn; hevalbendan esker derêxistin bejê jî. Lê, li dawiyê jê kişiyan û eleman di Norvêjê de cih bûn.

### GULAN

10 — Elemanan berda ser Belçîkê û Holendê. Van her du dewletan dest bire xwe û ingilîz û frensiz jî çûne hewara wan.

14 — Ordiwa holendî piştî ko xesareke mezin gihaşt-ê çekên xwe danî û teslîm bû. Qraliça wê digel hikûmeta xwe çû Ingilterê.

28 — Belçîke jî piştî ko 18 rojan şerê elemanan kir şikest û teslîm bû. Qral di welêt de ma; ne çû derve.

### HIZÊRAN

5 — Di vê rojê de şerê erdê Frensayê dest pê kir.

10 — Gava talyanan dît ko Frense dişkê ew jî ketin şer û li Frensê û Ingilterê îlanherb kirin.

22 — Reîscimhûrê Frensê istifa kir merêşal Pêten hikim xiste destê xwe.

24 — Hikûmeta merêşal Pêten bi eleman û talyanan re miterekêk imza kir û şerê erdê Frensê bi vî awayî gihaşte dawiya xwe.

28 — Ûrisan bê şer û bi lihevhatineke kotek Beserabiye û Bûkovinye ji Romanyayê standin.

### TÎRMEH

3 — Di Wehranê de stola ingilîzî bi tehmeta ko Laval stola frensizî teslîmî elemanan bike direjî stola frensizî kir û xesareke mezin gihande wê.

### TEBAX

8 — Elemanan bi halafiran dest bi bicûma Ingilerê kir. Carina balafirên elemanî bi şev û roj li Londrê didan. Xelk dadiketin zêrzeminan û bi hezaran bombe di ketin ser paxitextê Ingilistanê. Ev şerê hewayî heta 5ê Çiriya-pêşîn dom kir. Elemanan dixwest bi vê bicûmê ingilîzan

## JI ŞEBISTAN

### JI RASTEDAR RE

Rastedar ezgorîl

Reşbeleka te gihaşte destên me û gelek bihina me pê hat. Tu pirsa me û pirsa welêt dikî. Bi vê pirsiyriyê tu birînên me daxêvînî. Lê çi xem. Ji xwe birîna ko naêşe û naribe mirov li dermanê wê nagere. Nemaze brînên me, ew birînên ko devên wan ne hatine hev û her dixwazin baxêvin. Belê guh bide ez ji te re bibêjin.

Herçî welat û halê welêt: Riyên bê rêwi, rêwiyên nebirê... bixêriyên bêdû, gundên kavil.... ne pez û ne şivan... zeviyên rût; bênder bûne mêrg, kelehên bê segman, newalên têrovî, zozanên bê şêr, dawêtên bê def û govend...

Herçî em, çi bêjime te. Xwezî te ne pirsiya û min jî ne gota. Belê em bi xwe, bê serek û bê peya, bê xulam û bê mêvan; destên vala, zendên bêxebat, dêmên qermiçî, bêxwêbdana eniyê piştên qor...

Belê bûk û zava; lê dil hemî zingargirtî. Ne Gulavêjek, ne Ronahîk, ji xwe kes naye Hawara me.

Xwezî bi we; sed xwezî... Belê hawar li nav we dabiketiye, di tariya şevê de bi Ronahiya Gulavêjê hon pêş û paşê xwe dibînin.

ŞEBISTAN

bimelisînin û ji desthilanînê bêxin. Lê ingiliz li ber sekinîn û eleman jê geriyan.

19 — Talyanan di Efrîqayê de dirêji Somalistana ingilîzî kir. Ji ber ko di vê mistemlekê de eskerên brîtanî gelek hindik bûn talyan di çend rojan de ketin ê.

İLON

15 — Merêşal Grazyanî, fermandarê talyanî, ji tixûbên Libyayê dirêjî Misirê kir û kete Sidi-Beranî. Lê jê bi pêş ve ne çû. İtalyayê ev pêşveçûn bi cejininę mezin şahînet kir.

27 — Ji vê tarîxê ve heta 24ê Çiriya-paşin, Japon, Mecer, Romanye û Slovakye, li pey hev, ketin peymana elemanan.

ÇIRIYA PÊŞİN

28 — Talyanan di erdê Ernawidilixê re dirêji Yewnanistanê kir. Di pêşiyê de talyan keti bin hin gundên yewnanan jî; piştre yewnanan ew bi şûn de vegerandin û ketin erdê talyanan.

KANÛNA PÊŞİN

9 — Ingilîzan xwe kar kir û avête ser talyanan û ew ji erdê Misirê derêxistine û dane pey. General Wêvel talyan ajotine heta Bingaziyê. Vî şerî heta 6e Sibatê 1941ê dom kir, ingilizan bajarê Bingaziyê zemt kir û gihaştin tixûbên Trablisxerbê.

SALA 1941

KANÛNA PAŞİN

12 — Ingilîzan dirêjî imperatoriya Hebeşistanê kir û zora talyanan bir. Li 20ê Gulanê ingiliz ketin Edisababayê, payitextê Hebeşistanê. Impertorê hebeşî Hêlaselasî vegeriya welatê xwe û ji nû ve li ser textê pêşiyên xwe rûnişt.

ADAR

2 — Birxaristan jî kete tifaqa sêbendîn, tifaqa eleman û talyan û japonan û di roja xwe de eskerên elemanî derbasî erdê Birxanistanê bûn.

11 — Emêrikê qanûna deyn û arîkariyê danî. Li gora vê qanûnê Emêrike heçî dewletên ko şerê Elemanyayê dikin ji wan re çek û aletên cengê bi deyn dide.

25 — Yûgoslavye jî kete tifaqa sêbendîn. Bi şertê ko eskerên elemanî derbasî erdê wê nebin.

27 — Li Yûgoslavyayê ordiwê hikûmeta ko tifaqa sêbendîn imza kirî bû xist û hikûmeta nû ciwaba elemanan da.

NÎSAN

3 — Fermandarê elemanî Romel ji tixûbên Trablisxerbê berda ser ingilîzan. Ingiliz vegeriyan heta tixûbên Misirê. Lê asêgeha Tobriqê ji dest ne dan û tê de asê bûn.

6 — Elemanan avête ser Yûgoslavye û Yewnanistanê. Ingiliz çûn hawara wan. Vî şerî heta dawiya vê mehê dom kir. Elemanan ev her du welat vegirtin. Ordiwa ingilîzî vegeriya Misirê, lê bireki wê daket girava Giritê Qral û hikûmeta yewnanî jî di wê giravê de cih bûn.

13 — Ûris û japonan peymaneke nelihevxistinê imza kir.

19 — Iraqî bi hênceta ko ingiliz gelek esker anîne erdê Iraqê, li ingilîzan rabûn û bû şer. Ingilîzan zora iraqiyan bir û li 3ê Gulanê li Iraqê her tişt vegeriya halê xwe ê berê.

ŞIHIRÊN ZAROKAN:

## DIBISTAN

« JI EKREM BEGÎ RA »

Destpêk bi navê Yezdan
Divê êdî bixwînim
Da her tiştî bizanim
Berî vêya gelê min
Daketî bûn hêla jêr
Lê ji îro bi şûn da
Herçî kurd e wê bixwîn,
Welatê xwe bistîne
Em in xweyî war û şûn
Ji bo me ye hêla jor
Serxwe nabe kurdistan

Ev e diçim dibistan
Bo rastiyê bibînim
Heya ko pê bikanim.
Nezan ma bûn mêr û jin
Reben pepûk û bêkêr
Di nav bajar û gunda
Da ko bibe xweyî şîn
Neyaran jê derîne
Doza me ye serxwebûn
Hildin ala kesk û sor
Bê xwendin û dibistan

## BIHAR

Gava dinê dibe bihar
Zozan têne gihartin zû
Nêrgiz, sosin, kulîk û gul
Dinya dibe wek gola şîn
Xesma siban birbangê zû
Vêk ra dikin şahî û saz
Bilbil dibe dengbêjê wan
Pîroz dikin rojên di hev

Dibişkivin devî û dar
Mîna cilê.ı bûkên di nû
Direvînin xeman ji dil
Çiçek didin sed rengî bin
Tev radibin ew teyr û tû
Hişyar dibin bulîlk û baz
Dikit qirîn ji dil û can
Hin xweştir e biharê şev

## TEVDÎRA MIŞKAN

Li welatê Mêrdînê
Pisikekî xurt û şeng
Mişk ne hiştin di malan
Kijanê wan dihat der
Welê ma bûn mat û gêj
Digot: gelê hevalu
Rêkê bo me çar bikin
Mişk ne man tev dicivîn
Her yekî yek digotin
Yekî wan î risipî
Du zengilan bibînin
Heke li kû pisik dî
Çigav dengê zêngil bê
Bi lez û hez veşirin
Gişkan digot: welê ye
Lê di nav xwe kes ne dîn
Pisik serbest biliştin

Di nav gundê Cilînê
Bû bû xudan nav û deng
Giş revîn qul û çalan
Pisık xwe zû davêt ser
Yekî wan î boçdirêj
Em girtî man di çalan
An ji li vir bar bikin.
Bo vê yekê peyivîn
Kezeb ji xwe disotin
Digot ev emin rê dî
Bidin yekî bişînin
Bila têxe stoyê wî
Wer zanibin ko ew tê
Nema bon kes dimirin.
Tevdîreke li rê ye.
Ko wî karî biqedin
Wî jî her ew dikuştin.

OSMAN SEBRÎ

GULAN

19 — Her Hês wekilê Hitler bi balafirekê ji Elmanyayê rabû û çû Ingilterê. Elemanan got, Hês din bûye.

20 — Eskerên elemanî bi balafiran daketine girava Giritê û heta dawiya mehê şer kirin û girav vegirtin. Qralê Yewnanistanê çû Ingilterê.

20 — Cenkeştiya elemanî Bismarkê cenkeştiya ingilîzî Hûd bin av kir.

27 — Ingilîzan ji Bismark bin av kir û heyfa Hûdê jê hilanî.

HIZÊRAN

8 — Ingilîz û golîstan dirêjî Libnan û Sûriyê kirine VI şerî heta 14ê Tirmehê dom kir û di wê rojê de general Denz çekên xwe danîn.

22 — Elemanan dirêjî Sovyêtistanê kir û şerê dinyayê ê mezintir dest pê kir. Ordiwên rûsî û elemanî rahiştine hev.

TÎRMEH

7 — Emêrîkê esker derêxiste girava Îslandayê. Îslande li bakuroavê Ewropayê ye û bi taca Denîmerkê ve girêdayî ye.

12 — Ûris û ingilîzan peymaneke hevalbendiyê imza kirin.

14 — Eleman di Bebira-reş de ketine bendera Nikolayêfê.

19 — Di navbera japon û frensizan de lihevhatinek hate imza kirin û eskerên japonî ketine mistemlîka frensizî, Hindiçîniyê.

25 — Ûris û ingilîzan dirêjî Ecemistanê kir. Eceman qederê 72 saetan şerekî derewîn kir û çûn rayê û teslîm bûn.

TEBAX

14 — Mr. Etlî di meclisê de da zanîn ko Mr. Çorçîl di cihekî Etlantîkê de gihaye Mr. Rûzwelt. Her du mirovdewletan di vê hevdûdîtinê beyanamak belav kir. Ji vê beyanamê re beyanama Etlanitîkê gotine. Ev beyaname dide zenîn ko piştî şerî sondxwarî heqê her miletî wê bidin. Ji ber ko kurdmanc jî miletek in, bivê nevê ji wada vê beyanamê para xwe wê bigirin.

26 — Ûris di bakur û di eniya Smolenskê de rabûne berhicûmê û dirêjî elemanan kirine.

27 — Eleman di Ûkranyayê de ketine Dinyepropetrovskê.

28 — Ûris ji Talînê, bi navê xwe ê kevin Rêval, kişiyan. Talîn di behira Baltîqê û di Estonyayê de ye.

30 — Fenlandî ketin bajarê Vipûriyê; bi navê xwe ê kevin Viborg.

ÎLON

8 — Mister Rûzwelt di meclisê de da zanîn ko eskerên sondixwariyan daketine girava Spîçbergê.

10 — Mister Rûzwelt da zanîn ko cenkeştiyên emêrîkanî yên ko di Etlentîkê de digerin emir standine, heke noqar, balafir û cengeştiyên elemanî têkilî wan bûn li wan xin.

19 — Eleman ketine Kiyêvê, payitextê Ûkranyayê

ÇIRIYA PÊŞÎN

16 — Ûrisan terka bendera Odêsayê da.

19 — Elemanan dirêjî Moskoyê kir. Mosko wek Lênîngradê li ber vê hicûmê sekinî, elemanan tu bavil jê ne kirin.

25 — Eleman ketine bajarê Xerkovê.

ÇIRIYA PAŞÎN

18 — Ingilîz di qada Lîbyayê de rabûne hicûmê û dirêjî xetên Romel kirine. Eskerên Romel û yên talyanan nikari bûn li ber ingilîzan bisekinin û ji ber baz dan. VI şerî heta 18ê kanûna paşîn sala 1942an dom kir.

22 — Elemanan da zanîn ko ketine bajarê Rostovê.

29 — Destpêka şerê nîvgirava Krimê.

29 — Ûris li elemanan vegeriyan, û di qada nîvro de bajarê Rostovê bi şûn de vegerandin. Bi vê zeferê êrîşa ûrisan ya Zivistanê dest pê kir û elemanan di dirêjahiya eniyê û di deverina de xwe dane paş. Ûrisan di dora Moskoyê de eleman bi şûn de vegerandine.

KANÛNA PÊŞÎN

7 — Japonan ji nişkekê ve bi ser giravên Emêrîkanî de girtin. Di giravên Hewayê de xesareke mezin gihaşte stola emêrîkanî. Dîsan di wê rojê de qewetên japonî ji Hindiçîniya frensizî dirêjî Siyamê, bi navê xwe ê nû Taylandê kirine. Piştî şerê ko du sê saetan ajot japon û taylandî li hev hatin û eskerên japonî derbasî erdê Taylandê bûne.

8 — Japonan di Hindiçîniyê re dirêjî mistemlîka ingilîzî Melêzyayê kir. Şerê Melêzyayê heta dawiya Sibatê dom kir û japonan ev nîvgirav bi temamî vegirt û gihaştin pêşberê Sengeporê û li peravên avtenga Melaqayê topîn danîn da ko li Sengeporê xin. Dîsa di vê rojê de eskerên japonî di bin himayeta stolê de daketine giravên Fîlîpînê. Emêrikaniyan qederê pênc meban beravaniya Filipînê kir û li 6ê Gulana sala 1942an japonan giravên Filîpînê tev de vegirtin.

18 — Japoniyan dirêjî Honkongê kir. Honkong di nîvrorohelatê Çînê de asêgeheke ingilîzî ye û tê de bendereke eskerî heye. Ingilîzan Honkong heta 26ê vê mehê midafehe kir.

31 — Ûrisan di Krîmê de Kerç û Téodosye bi şûn de vegerandine.

## SALA 1942

### KANÛNA PAŞÎN

3 — Ûrisan Maloyoroslovîç ji elemanan standine.

10,11 — Ûrisan eleman ji Mojayêsk û Lodînoyoyê derêxistine.

18 — Ordiwa ingilîzî eleman û talyan ji erdê Lîbyayê rêş kir û kete Bingaziyê. Romel vegeriya tixûbên Trablisxerbê û ji Egadabyayê wê ve qerar girt.

19 — Ûrisan Mojayêsk bi şûn de vegerand.

20 — Eleman ji nû ve ketin Téodosyayê û Ûris jê kişiyan.

23 — Japonan esker derêxiste Gîna-nû û bireki giravê zemt kir û avête ser giravên Silêman û Îrlanda-nû.

25 — Romel li ingilîzan vegeriya û li 6ê Sibatê gihaşte pêşiya Xezalê. Ingilîzan ew li wê derê seknand.

### SIBAT

1 Japonî li avtenga ko Sengeporê ji Melêzyayê diqetine derbas bûne û rast bi rast dirêjî Sengeporê kirine. Sengeporê heta 8ê Sibatê li her xwe da. Japonan piştî ko Sengepor safî kir avête ser giravên Hindistana holendî

14 — Piştî şerine no holendiyan çekên xwe danî û japonan girava Simatrê bi temamî vegirt.

27 — Japonan ji giravên Hindistana holendî, esker derêxiste Cavayê. Holendiyan heta 7ê Adarê şer kir û di vê tarîxê de çekên xwe danîn.

### NÎSAN

5 — Balafirên japonî li nîvroyê Hindistanê, dirêjî girava Seylanê kirine

22 — Bombavêjên emêrikanî di ser Japonyayê re firiyan, payitext û çend bajarên wê rodane ber bomban û jê berê xwe dan rohelê û çûn li balafigeheke Çîna nevegirtî danîn.

### GULAN

4 — Di Birmanyayê de eskerên japonî gihaştine Mendelayê û bi vî awayî riya Bûrmayê hate birîn.

5 — Balafirên ingilîzî bi refine ji sed balafiran bihevketî dest bi lêxistina Elmanyayê kir, û Havînê pê de vê êrîşê dom kir.

7 — Di Behira-Mercanê de stolên japonî û emêrîkanî li hev da. Japon şikestin û ji ber stola emerîkanî kişiyan.

13 — Ûrisan Kerç ji dest da.

13 — Ûrisan dirêjî Xerkovê kir. Li 19ê vê mehê eleman li ûrisan vegeriyan û rabûn berhicûmê.

29 — Romel ji xetên Xezalê rabû hicûmê û ingilîzan xwe da paş û kişiyan erdê Misirê. Okinlêk, fermandarê ingilîzî ordiwa heştan kişand heta Elemeynê û êrîşa elemanan li ber vê xetê şikest.

### HIZÊRAN

4 — Di dora girava Midweyê de stola emêrî

## REWŞA DINYAYÊ

**ESKERÊN SONDXWARIYAN DI BEJA EWROPAYÊ DE** — Beriya niho jî ingilîzan çend caran eskerên ko ji wan re kumandos dibêjin, derêxistine peravên Frensayê. Lê tucaran ew esker li bejê ji du sê saetan bêtir ne diman û mixdarê wan jî ne ewçend zêde bû. Lê vê carê li 19ê Tebaxê eskerên sondxwariyan bi pîrahî û bi tangan re hatin û li nîzingî Diyêpê daketin bejê. Ev hemle ewçend xurt bû ko xelkê got qey ingilîz û sondxwarî dikin eniya nû vekin.

Li gora danezanên brîtanî hemle bi awayê jêrîn çêbûye û plana sondixwariyan reẍma xesarên ko gihaştiye qewetên wan çûye serî.

Li 19ê Tebaxê, serê sibehê di saet heftan de vaporên ko eskerên bejê lê siwar bû bûn, di bin himayeta stol û stol di bin himayeta balafiran de ji benderên Brîtanyayê bi rê ketin. Gava eleman bi wan hesiyan stol û vaporên sondxwariyan qederê deh mîlan nîzingî li erdê Frensê kirî bûn. Balafirên elemanî derketin pêşiya neyarên xwe û drêjî stol û balafirên sondxwariyan kirin.

Di nav vî şerê behrî û hewayî de qeflek ji eskerên sondxwariya daketin bejê. Eskerên vî qefleyî kenedî bûn. Piştî ko lingên kenediyan erd girt û wan û elemanan rahişte hev kelekine xweser tangên xwe derêxistine reşahiyê û tangan ji digel piyadeyên kenedî dirêjî elemanan kir. Di pey kenediyan re ingilîz, emêrîkanî û frensizên şerevanî pê li erdê kirin û xwe li armancê girtin.

Reẍma her dişwarî û talûkeyê eskerên sondxwariyan di bejê de xwe saz kirin jû berdan ser çeper û kozikên elemanan. Eskerên kenedî yên ko giranîya hemlê tanin pê qedrê du kîlomêtiran pêş ve çûn û gihaştine riya ko digehîne bendera Diyêpê. Eskerên vê hemlê piştî ko depoxaneke dijmin û betarîke peravîn lal kirin piştî nîvro saet heftan de qefle terka beja Frensê da û vegeriya Brîtanyayê.

Hin tangên sondxwariyan gihaştî bin devên kûçeyên bajêr jî, ji ber ko tangên elemanî dikirin li wan bêne hev, fermandarê hemlê ew bi şûn de vegerandin.

Ji gotinên ingilîzan welê dixuye ko ev êrîşeke keşfî bû û sondxwariyan havileke mezin jê kiriye. Miẍdarê eskerên ko daketine bejê bi temamî ne hatî be jî seh kirin bi texmîn ew 15-20000 peya bûn.

ŞERÊ MEDAGASKARÊ — Li 5ê Gulana sala 1942an ingilîzan avêti hû ser girava Medagaskarê û di bakurê giravê de bendera Diyêgo-Siwarês zemt kiri bû. Hingê ingilîzan bi standina vê benderê bes kiri bû. Lê vê paşiyê ingilîzan ji bo ewlehiya riyên vaporên xwe ji nû ve esker rêkirine giravê û ew esker li 11ê mehê daketine nivrorohelê giravê û bendera Morondavayê zemt kirine û jê berê xwe dane bundirê welêt Tananarîvê, merkeza giravê.

Waliyê Medagaskerê yê ko di bin emirê Vişiyê de ye li ber xwe da. Lê ingilîzan muqawemeta frensizan şkênand û ber bi pêş çûn. Welê dixuye ko ingiliz heta çend rojan zora frensizên giravê wê bibin.

ŞERÊ MISIRÊ — Li 1ê Îlonê bi şefeqê ve Romel di eniya Misirê de rabû hicûmê û li ser dirêjahiya eniyê dirêji xetên ingilîzî kir. Lê li 3ê mehê Romel nemaze zora xwe da nivroyê eniyê û di nav Birelbebis û Birelmerîrê re kete nav zeviyên lexemkirî, yanî erdê ko dijminan lê torpil û lexem danî bûn. Romel bi fedakarîne mezin di nav wan zeviyan re qederê 13—14 kîlomêtiran ber bi pêş çû. Lê ordiwa ingilîzî a heştan ne hişt ko eskerên Romel jê wê ve herin.

Ordiwa heştan piştî ko êrîşa Romel sekinand rabû berhicûmê û talyan û eleman bi şûn de vegerandin. Li 8ê Îlonê Romel vegeriya bû çeperên xwe ên pêşin. Bi vî awayî êrîşa Romel şikest û ordiwa ingilîzî bi xurtî di cihên xwe de sekinî. Ji hingê ve di wê eniyê de şerê balafiran û lihevxistina topçiyan e.

Bi tenê li 14ê mehê eskerine kumandoş daketine erdê Tobriqê û bin depoxane û avahiyên eskerî berhewa kirine û stola ingilîzî bin vaporên mihwerê di benderê de bin av kirin.

ŞERÊ ÛRIS — Ûris xwe bidin paş ji bi mêranî kani li stola japonî xist û xesareke mezin gihande wê. Disan di vê rojê de japonan esker derêxist giravên Eleûtenê.

27 — Eleman ketine Kûbyanskê.

TÎRMEH

1 — Elemanan di navbera Kûsrk û Xerkovê re dest bi hicûma mezin kir. Hicûma ko jê re hicûma Biharê dibêjin.

4 — Ûrisan Sevestepol ji dest da û eleman ketin ê Bi vî awayî şerê Krîmê safi bû.

7 — Şerê Çinê sala xwe a pêncan qedand û kete a şeşan. Vî şerî li 7ê Tîrmeha 1937 an dest pê kiri bû.

8 — Eleman ketine Starayaroskolê.

24 — Ûrisan Rostov ji dest da.

TEBAX

7 — Emêrîkaniyan esker derêxiste giravên Silêman. Bi vî awayî di Pesîfîkê de emêrîkaniyan dest bi êrîşê kir.

9 — Eleman ketine Krasnodarê, Krasnodar di Behira-reş de bendereke rûsî ye.

19 — Ingiliz û sondxwariyan esker derêxiste Diyêpê.

û qehremanî şer dikin û xesarine mezin digehînin dijminên xwe. Ji bo sebata ûris mirov dikare bibêje ko eskereki elemanî ji bona ko rûseki ji riya xwe bide alî, dareke ko rayên wê di bin erdê re çûne bildikişîne.

Piştî ko eleman gihaştine quntar û neqebên çiyayên Qevqasê êrîşa elemanan gelek kêm kiriye.

Li aliyê nîvro elemanan ji du baskan berdaye welatên Qevqasê. Baskekî di peravên Behira-reş re xwe li bendera Novorosîskê rast kiri bû. Vî baskî li 2ê Îlonê bendera Enapayê vegirt û zora xwe da Novorosîskê. Danezanên elemanî da zanîn ko ordiwa elemanî li 4ê Îlonê ket Novorosîskê jî. Lê ûrîsan derew bi aliyê vê nûçê ve da û piştre xuya kir ko wê rojê eleman bi tenê asêgeha bajêr zemt kiri bûn û şer di kûçeyên bajêr û di benderê de dom dikir. Lê piştî çend rojan ûris bêgav man û jê kişiyan û di nîvroyê Norosîskê de ketine xetine nû û di berevaniyê de pê didin erdê.

Baskê di berê xwe da bû Grozniyê. Groznî merkezeke petrolê ye. Eleman di vê qadê de jî bi zehmet û gelek hêdî ber bi pêş diçin. Li gora danezanên paşîn ordiwên elemanî hêj ji Grozniyê 40-50 kîlomêtir dûr in û di bilindcihên Qevqasê de berfê dest bi ketinê kiriye.

Herçî Stalîngrad, şer di dora wê de xurt bûye, Stalîngrad li ser çemê Volgê bajarekî mezin e. Erdê bajêr di perên çem re qederê 40 kîlomêtir dirêj dibe. Eleman gelek zorê didin Stalîngradê. Ji ber ko Stalîngrad ji alikî merkezeke sinabî, ji aliyê din mifta Volgê ye. Bi standina Stalîngradê Rûsya nîvro ji Rûsya bakur qut dibe.

Elemanan ji nîvro, ji bakur û ji roavê berdaye Stalîngradê û bi qewetine mezin dirêjî bajêr dikin. Piştî dehê mehê ordiwên elemanî di bakur û di nîvro re gihaştine Volgê. Heseb Stalîngrad kete bin mihaserê. Lê vêna berevaniyên bajêr bi tu tiştî naşkê. Belê cih li ûrisan teng bûye; lê ûris di vê tengiyê de jî bi dilfirehî şerê xwe dikin.

Li 12ê Îlonê serfermandariya rûsî heçî pirên Volgê hene tev de dane berhewa kirin û riya vegerê li eskerên xwe birin. Serfermandarî di emirê xwe de dibêje, ji bo midafiîhên Stalîngradê veger ne maye, divêt Stalîngrad heta mirov û berikê paşin şerê xwe bikit. Midafiîhên Stalîngradê welê jî dikin.

Li 13ê Îlonê eskerên elemanî gihaştine dora bajêr û ketine devên kûçe û koldnan. Ji hingê ve şer di nav bajêr de çêdibe û ûris bajarê xwe kûçe bi kûçe, xanî bi xanî midafehe dikin; carina eleman dil.evin bin mezelên avahikê, di hinên din de hêj ûris hene. Ûris terka van mezelan nadin û di lîwana avahiyê de li dijminê xwe diqelibin û didin singên hev.

Ev şer dimîne şerên kurdmancî. Ma li wextê berê şerevaniyên kurdmanc aş û asêgeh li hev qul ne dikrin û tê de ne diketin singên hev û bi xencerạn li hev ne dixistin?

Piştî ko ûrisan rê li xwe birîn hawar û gaziya bajêr bi balafiran têt. Heye ko Stalîngrad bikeve destê elemanan. Lê bi vê midafehê ûrisan plana elemanan bi gelekî guhartine û bicihanîna wê warqilandine.

Mirov bê hemtê xwe li vê mêraniyê ecêbmayî dimîne. Di dema şikestinê de jî li berxwedan ne karê her camêrî ye.

ŞAM: 15 Îlon 1942 NÊREVAN

# BRÊZÎLYE

Brêzîlye jî kete şer. Brêzîlye yek ji cimhûriyetên Emêrîka nîvro ye. Ji Emêrîka nîvro re Emêrîka latîn jî dibêjin. Ji ber ko xelkê wê bi piranî ji nîvroyê Ewropayê û nemaze ji Spanye û Portekîzê çûne wan deran û di wan welatan de qerar girtine.

Brêzîlyê jî wek piraniya dewletên Emêrîka nîvro qutbiriya xwe ji mihwerê kiri bû; lê mîna Şîlî û Erjantînê hêj ne keti bû şer. Vê paşiyê noqarên mihwerê ji nû ve çar vaporên Brêzîlyayê bin av kirine. Li ser vê yekê Brêzîlye ji rabû ji Eleman û Îtalyayê re ilanherb kir. Di nav erdên Emêrîkayê de erdê Brêzîlye ji ber derê bêtir nêzîngî Ewropayê ye. Ji vî awirî ve jî şerevaniya Brêzîlyayê kirdeyeke girane ye. Bi vê hêncetê me dil kir xwendevanên Hawarê li ser bin tiştên wî welatî serwext bikin.

Di sala 1500î de emiralekî portekîzî Brêzîlye keşif kir û Brêzîlye bû mistemlekeke wê dewletê. Di sala 1815an de Mîr Bêdro, kurê qralê Portêkîzê bû xidîwê wî welatî û di sala 1822an de Bêdro istiqlala Brêzîlyayê îlan kir û Brêzîlye bû welateke bi ser xwe. Lê di sala 1889an de di Brêzîlyayê de ixtilalek çêbû; xelk li qral rabûn, ew ji text êxistin û cimhûriyet îlan kirin. Ji hingê ve Brêzîlye jî wek dewletên Emêrîkê ên din cimhûriyetek e.

Rûyê erdê Brêzîlyayê 3 275 510 kilomêtir çarçik e û nifûsa wê 43 milyon e. Paytextê Brêzîlyayê Riyodêjanêro ye. Zimanê resmî û zimanê piraniyê portêkîzî ye. Lê herçî wilayetên nîvro, tê de bi elemanî û talyanî jî xeber didin.

Brêzîlye di nav cimhûriyetên Emêrîka nîvro de a dewlementir e. Di erdê wê de zêr, hesin, menganêz, komir, elmas h. d... peyda dibin. Herçî hatinên wê: qehwe, kekao, birinc, penbû, tenbakû û şekir in. Di Brêzîlyayê de rêline welê hene ko hêj însan pê li wan ne kiriye. Dibêjin ko darên wan rêlan qederê hezar salî têra dinyayê dikin. Çemê Emazon, çemê dinyayê ê dirêjtir ( 6420 kilomêtir dirêj ) tê re dibore.

Qehwa Brêzîlyayê zehf û bi nav û deng e. Ji qehwa dinyayê hemî ji sedî 65 ji Brêzîlyayê dertêt. Qehwa Brêzîlyayê têk de 66 milyon kîs in. Ji van 66 milyonan 16 milyon di hundirê welêt de dimînin û a mayîn rêdikin derve. Ji ber zêdahiyê, carina qehwa wî welatî kêmbeha dibe. Ji lewre hikûmet ji sedî 30 part ji cotkaran bi behakî nizim dikire û wê dişewitîne.

Di Brêzîlyayê de xizmeta eskerî mecbûrî ye û midetê xizmetê neh sal in. Di sala 1939an de yanî wextê ko şer dest pê kir di ordiwa Brêzîlyayê de 6548 zabit û 73275 esker hebûn. Herçî stola wê ji zirehpûşek, 17 bertorpiyor 4 noqar, 4 torpiyor, 6 torpîlçîn û ji çend vaporên petrolkêş bi hev diket. Lê Brêzilye ji hingê ve ordû û stola xwe xurt kiriye. Vê dewletê piştî şerî di balafirvaniyê de jî zêde kiriye Ji bo vê yekê hikûmeta Brêzîlyayê ji Îtalyayê mamosteyên balafirvaniyê jî anî bûn. Lê piştî ko Îtalye di rex Elemanyayê de kete şer ew mamoste vegeriyane welatê xwe.

Reîscimbûrê Brêzilyayê Cîtolyo Fergas çîrokeke delal û cazibedar heye. Fergas di xortaniya xwe de şivanê ber pez bû. Xweş li bilûrê pif dikir û distrand. Dilê keçikekê pê keti bû. Lê keçik pê qail ne dibû, ji ber ko Fergas ne ji maleke nas bû. Fergas jê re digot: « Keçê, tu iro min nakî ji ber ko ez şivan im, lê rojekê tiwê poşman bibî. Belê tiwê bibînî ko tu bi reîscembûrê Brêzîlyayê yê ayendê qail ne bûyî »: Keçik li vê gotinê dikenî, heji Fergas dikir, lê qail ne dibû ko bibe jina şivanekî.

Fergas ji şivaniyê derbasî ordiwê bû û midekî tê de ma. Ji ordiwê jî derket û kete dibistana biqûqê û bû evkat. Di pey re ji xwe re rojnameyek ji derêxist û li dengê xwe geriya û deng pê ket. Fergasê şivan di parlamanê de bû nimînende yanî mebûs.

Di sala 1930î di Brêzîlyayê de ji ber zêdahiya qehwê bihraneke iqtisadî çêbû. Fergas ji emelan, ji xwe re, hizbek çêkir û namzediya xwe danî riyasetê. Lê namzediya wî ne çû serî û yekî din bû reîscimhûr. Lê Fergas imîda xwe ne hirî.

Fergas gava dît ko îş bi qencî çênebû, rabû hevalên xwe ên kevin, şivan, dane hev û ji Sênpawloyê dirêjî Riyodêjanêroyê kir. Di navbera şivanên Fergas û eskerên hikûmetê de şer çêbû Şivanên Fergas zora polîs û eskeran bir, reîscimhûr danin û li şûna wî Fergas bû reîscimhûrekî diktator. Ev donzdeh sal in Fergas reîscimbûrê Brêzîlyayê ye û dostika wî ya wextê şivaniyê jina memûrekî adetî ye.

XELÎLÊ GENCO

## ÇEND IMEDHELOKÊN JAPONÎ

Kêm caran mirovê xurt ne hişk e.
Sefera sed kîlomêtirî bi gavekê dest pê dike.
Heçî zane xeber bike, dizane derewan jî bike.
Di edebê de zêdekirin bêedebî ye.
Dizê peran dikin hepsan, dizê erdan dikin siltan.
Çêtir e ko mirov di fenekê de xurt be, li şûna ko di çendekan de qels be.
Pisingên xelkê jî mirov re mişkan nagirin.
Rizû çayasar bêne xwanin jî pirsên sar nayine daxwarin.

## COUTUMES ET TRAITS DE MOEURS

146 — Mîr terka baz û şahîn kir, sîsyang û tilûr kirine şewirdarê xwe.

L'émir a délaissé le faucon, il a pris pour conseillers la bergeronette et la tourterelle.

147 — Nan û pîvaz û nexweşî çavreşî ye.

( Qui a ) du pain et des oignons et se prétend malade est un gourmand.

148 — Ne gayê min li garanê ye, ne galgala nanê gavên dikim.

Mon boeuf ne fait pas partie du troupeau, je ne parle pas de ce que mange le bouvier.

( C'est à dire: je ne me mêle que de ce qui me regarde, et n'ai pas à pâtir du reste. Dans beaucoup de villages kurdes, les troupeaux sont gardés par un berger communal ).

149 — Ne jina belaş, ne xulamê bê meaş, ne erdê kaş.

Ni femme épousée sans payer la dot, ni valet sans gages, ni terre en pente.

150 — Şeb û şekir li cem şivana yek e.

Alun et sucre candi, c'est tout un pour le berger.

151 — Şekir ne xurdê şivana ye.

Le sucre n'est pas nourriture de berger.

( Allusion à la vie rude que mènent les bergers kurdes ).

152 — Şêx ne î batin e, kul bi serî hatine.

Le chaykh n'est pas miraculeux, mais il a de l'expérience.

153 — Şikeft bi dengbêja de ket, dest bi mamika kirin.

Les dangbêj ( troubadours ) s'étant trouvés dans uue caverne, ils se mirent à réciter.

( Ils profitent de l'écho qui donne plus de force à leur voix ).

154 — Şûrê Misrê bikeve avê de jeng nagirê.

Sabre d'Egypte qui tombe à l'eau ne rouille pas.

( Les sabres épyptiens et damascains étaient particuliérement estimés.

155 — Şûr Şam, xencer mam, jin dotmam.

Sabre de Damas, poignard pareil à un oncle paternel; pour femme la cousine.

156 — Tu li beriya Mêrdînê li siwara dipirsî.

Tu cherches des cavaliers dans la plaine de Mardine.

( La plaine de Mardine est un pays de cavaliers par excellence ).

157 — Xerîbî ne tu çek e, piyê xwe tê re meke.

L'exil n'est pas un vêtement, n'y mets pas l'épaule.

( Allusion à la répugnance qu'ont les Kurdes à s'expatrier ).

158 — Xwarzî tên li xwalan weke ciwanî tên li fehlan.

Les neveux ressemblent à leurs oncles maternels, comme le polain à l'étalon.

159 — Xwîn bi xwînê naye şiştin, xwîn bi avê tête şiştin.

Le sang ne peut laver le sang, mais l'eau l'efface.

(Allusion aux vendettas qui ensanglantent le Kurdistan).

160 — Jina werîn ji malê mezin, pê bide hezar û hin, da jê bikevin Mîr Şem û Qeretacînê min.

Prend femme dans une grande maison, paie mille et plus; elle enfantera Mîr Cham et Qaratâdjin.

( Voir No 144 Mîr Cham et Qaratâdjin sont deux héros de la légende de Mamé Alân ).

161 — Mêrê bi du jina dergevan e.

Qui épouse deux femmes fait le portier.

## PHENOMNES METEOROLOGIQUES

162 — Şeva çirîn, kew diçêrin.

Les nuits d'Octobre et Novembre ( sont si claires que ) les perdrix vont en champs.

163 — Nabêna Temûz û Tebaxê, ecêb e ko agir nagire axê, ne li hir, lê li orta Hevlêr û Şaxê.

Entre juillet et août, c'est merveille que le feu ne prenne pas à la terre, non pas ici, mais dans les parages de Havler et de Chakh.

( Se dit au Botân, contrée montragneuse et fraîche ).

164 — Adar e, berfê avêt guliva darê, ne ma heya danê êvarê.

En mars, la neige couvre les branches des arbres Mais fond avant le soir ( se dit chez Dakchûri ).

165 — Adar e, dew li dar e ne li vir, lê li çiyayê Şingalê ( an: li Hop û Hekarê ).

Dès Mars, on fait du lait caillé, pas ici, mais au Sindjar ( ou: à Hop et Hakkari ).

( Se dit chez les Haverkan qui habitent une région où il fait encore froid en mars ).

## ENIGMES

166 — Av e, ne av e, marê mirî di nav e, teyrê zêrîn hindav e. ( lampe )

C'est de l'eau sans en être avec un serpent au milieu et au dessus, un oiseau d'or ( la lampe ).

167 — Çar bira berdidin pey hev, yek nagihe yekî ( serbist ).

Quatre frères qui se poursuivent sans jamais s'atteindre ( les pointes des quatre aiguilles à tricoter ).

168 — Du bira hene, her li hev dinêrin ( kuçê tifikê ).

Deux frères qui se regardent toujours ( les chenets ).

169 — Ez di devekî ve diçim, di sisiya ve derdikevim ( kiras ).

J'entre par un orifice, je sors par trois ( la chemise ).

170 — Hinde tiliyekê tejî xeniyekî ( ronahî ).

Gros comme un doigt, plein la maison ( la lumière ).

171 — Jinek heye, bi du mêra ye ( dam ).

Une femme à deux maris ( le jeu de dames ).

172 — Kok di erdê de, serî di te de, orte di kerê de ( genim ).

La racine en terre, la tête en toi, la tige en l'âne ( le blé ).

( A suivre ) TAWÛSPARÊZ

---

Kiriyariya Hawarê 500 Qirûşên Sûrî

Xwedî û gerînendeyê bepirsiyar: Mîr Celadet Alî Bedir-Xan . Şam—Sûriye

Directeur Propriétaire: Emir Djéladet Aali Bedir-Khan, Damas-Syrie

ŞAM — 1942 — ÇAPXANA SEBATÊ

SAL 10
HEJMER 50
PÊNCŞEMB
15ÇIRIYA PÊŞÎN 1942

# HAWAR

ANNÉE 10
NUMÉRO 50
JEUDI
15 OCTOBRE 1942

KOVARA KURDÎ ✦ REVUE KURDE

DI VÊ HEJMARÊ DE



## TEFSÎRA QURANÊ

187 — Wê demê bînin bîra xwe... Mezinên xudankitêban ji Xuda re swind xwari bûn ko ew hicetên pêxemberitiya Bezma Mihemed venaşêrin û wan pêş xelkê dikin. Lê wan piştre ji bo xatirê çend peran bextê xwe reş kir û swinda xwe avêt pişt guhê xwe. Ew dan û standina wan bi çiqasî kirêt û ne hêja ye.

188 — Guh mede wan... Ew nefsa xwe bi tiştên ko pêk ne anîne li ber xelkê mezin dikin û zirtê xwe didin û dixwazin ko xelk jî pesnê wan bide. Wan xwe ji cezayê Xuda xelas ne kiriye, ji bona wan êşeke giran heye.

189 — Erd û ezman milkê Xwedê ne û Xuda bi her tiştî dikare.

190 — Di afirandina erd û ezmanan de û di çûn û hatin û kurt û dirêjbûna şevan de, ji bo mirovên bîrewer hikmetine hêja hene.

191 — Ew, di rabûn, rûniştin û raketinê de Xudayê xwe ê mezin tînin bîra xwe û bi hikmeta afirandina erd û ezmanan mijûl dibin û dibêjin: Xudanê me, te erd û ezman bê sebeb ne afirandine; me baweriya xwe bi te girtiye, me ji ezabê dojehê biparêze.

192 — Xudayê me... mirovê ko tu davêjî agirê dojehê, perîşan û şermisar dikî. Ji ezabdarên nefsa xwe re tu arîkar nîne.

193 — Xudanê me... Me dengê Quranê û pêxemberê ko li ser riya rastî û baweriyê banî me dikir bihîst. Wî digot: baweriya xwe bi Xwedê bînin; me jî bawariya xwe pê anî. Xudanê me, di gunehên me bibore û sûcên me efiw bike, canê me di dema standinê de, bike hevalê canê qencîkeran.

194 — Xudanê me.... Sewaba ko te mizgîniya wê bi pêxemberên xwe re bi me da, bide me û me di roja pişdawiyê de şerpeze û şermisar meke. Tu mezin î, bextê xwe xira nakî.

195 — Xudanê wan, ji kerema xwe li wan vegerand û got: Ez qenciya kirin û emelê we nas dikim û ew li cem min winda nabe. Qencîker jin an mêr bin, di nav wan de tu ferq nîne, ew weke hev in. Yên ko ji bo parastina dînê xwe ji welatê xwe hatine derêxistin û di riya min de hatine êşandin û dest bi şerî kirin û gihane mirinê; ez di gunehên wan diborim û wan digihînim bihuştên têr av û kanî. Ev şabaşa Xuda ye û tu şabaş ji ya Xwedê ne spehîtir e.

196 — Di dinyayê de dewlemendî, çûn û hatin û zirt û fortê kafiran bila we nexapînin.

197 — Ev tiştên he, kêmqedr in, dawiya wan kafiran ketina dojehê ye; dojeh cihekî têr şerm û ezêb e.

198 — Lê yên ko ji Xudayê xwe tirsiyar in, li gora emrê Xuda dimeşin, xweyî bext in, ji dîn û welatê xwe hez dikin, xebatker in, derewan nakin, pakbeden û pak dil in, qenciyê dikin û ji xirabiyê dest dikişînin, destvekirî ne, ne çavteng in, arîkariya feqîr û sêwiyan dikin; ji bona wan bihuştên têr av û kanî hene û ew her tê de dimînin. Di wan bihuştan de, ji bo wan, ji bal Xwedê ve her tiştên çak û pak pêda dibin. Ji bo bawermendan ji kerem û rehmeta Xuda xweştir tu tişt nîne û her tiştê ko ji bal Xuda ve ye baş e.

# BINGEHÊN

## GRAMÊRA KURDMANCÎ

— 19 —

### DERECEYÊN RENGDÊRÊN WESFÎN

128 – Rengdêrên wesfîn, wesfê navdêran bi dereceyên têvel dikarin bidin zanîn. Bi gotinên ǥin ev rengdêrên ha di qisetê de ji awirê mana û bastûrê ve di şikiline têvel de têne dîtin. Wekî niho gava mirov dixwaze wesfê bezabûna hespekî bide zanîn dikare bibêje:

1 — Ev hesp heza ye.

2 — Ev hesp ( ji ê din ) bezatir e.

Di komeka pêşîn de rengdêra beza, wesfê navdêra hêsp gava ev bi tena xwe û bezabûna wî adetî ye, ne kêm û ne ji zêde ye, dide zanîn. Di vî halî de rengdêr di halê adetî de ye.

Herçî komeka diwim, tê de rengdêra beza di şikilekî din de ye û « tir » ek pê ve bûye. Bi ;vê « tir »ê rengdêr dikeve halê kemper, yanî miqayesê. Belê gava em « Ev hesp bezatir e » dibêjin; hespê ha hatiye dayîn ber hespekî din û ji ê din bezatir derketiye. Ji lewre parkîta « tir » ê bêt ko navdêra rengdêrê bi navdêreke din bête kemperandin yanî miqayese kirin, bi rengdêrê ve nabe.

QEYDE — Ji bo çêkirina kemperiya dengdêran li rengdêrên adetî « tir » ekê zêde dikin. Herwekî: qenc-qenctir, bilind-bilintir, spehî-spehîtir, sor-sortir, dirêj-dirêjtir, fireh-firehtir, xurt-xurtir, beza-bezatir h. d.

129 — Ji milê din rengdêrên wesfîn di halên xwe ên adetî û kemper de bi zêde kirina hin pirsan, nemaze hokeran di mana xwe de kêm û zêde dikin.

1 — Ev hesp beza ye.
Ev hesp hinek beza ye.
Ev hesp gelek beza ye.
Ev hesp yekcar heza ye.
Ev hesp ne ewçend beza ye.
Ev hesp bi qasî hev beza ne.

2 — Ev hesp ( ji ê din ) bezatir e.
Ev hesp ( ji ê din ) hinek bezatir e.
Ev hesp ( ji ê din ) gelek bezatir e.
Ev hesp ( ji ê din ) yekcar bezatir e.
Ev hesp ( ji ê din ) ne ewçend bezatir e.
Ev hesp ji hev ne bezatir in.

130 — Disan ji aliyê din rengdêrên wesfîn ên adetî gava « ne » yek dikeve pêşiya wan bi awakî din mana dibin û dikevin şikilê nerênî. Herwekî dagirtî-nedagirtî. Ev tifing dagirtî ye. Ev tifing nedagirtî ye.

Lê heke « ne » bi rengdêrê ve ne bûye hingê rengdêr ne nerênî ye. Bi rastî gava em « ev tifing nedagirtî ye » dibêjin jê mexsed ew e ko tifing vala ye. Lê heke me « ev tifing ne dagirtî ye » dibêjin jê mexsed ew e ko tifing hêj ne hatiye dagirtin. Yanî nerênî ji rengdêrê bêtir li lêkerê hikim dike.

### RENGDÊRÊN IŞARKÎ

131 — Ev rengdêrên ha dikevin pêşiya navdêran û li wan işaret dikin. Rengdêrên işarkî ji pronavên işarkî ên pivene « ev, ew » pêve, ne tu tişt in û gava navdêrên wan ji komekê dikevin ew vedigerin ser eslên xwe û wezîfeyên xwe ên bingehîn dibînin; herwekî di mîsalên jêrîn de tête dîtin:

Ev mirov îro ji bajêr hat.
Ev îro ji bajêr hat.
Ewî mirovê ko tu dîtî birayê min e.
Ewê ko tu dîtî birayê min e.
Evan mirovan gote min ko tu çûyî nêçîrê.
Evan gote min ko tu çûyî nêrçîrê.

132 — Me di mada 57an de gotî bû ko navdêrên nêr bi guhartina « a » û « e » ya wan bi « ê » kê jî têne tewandin û di hin derên Kurdistanê de ev navdêr gava yekejmar in yekcar nayine tewandin. Lê heke rengdêreke işarkî daye ber navdêrê hingê navdêr ji kijan mêjer û zayendî be jî li gora qeyqa gelemper tête tewandin. Ji lewre mirov nikare bibêje « Ez vî hêsp, an, vî hesp dibînim » divêt bibêje « Ez vî hespî dibînim ». Herwekî: vî hespî,van hespan — wî hespî,wan hespan — vê mehînê,van mehînan — wê mehînê,wan mehînan. ( dûmahîk heye)

# DÎWANA MELÊ

— 34 —

Ney şekera gerden ji ac dîsa ji reş tozên semed
Qewsê li bala ferq û tac keybir reşandin bê eded
Keybir reşandin bê hîsab misrî ko dan sîqal û tab
Sed Ristem û Efrasiyah kuştin li wan ker kir cesed
Sed padîşah û Xisrewan can dan ji eşqê wan rewan
Şîrin û libsê erxewan min dî li bejina serwî qed
Min dîn li bejna er'erîn tayên zibad û enberîn
Bayê seba da cenberîn zilf çûne ser nûra semed
Zitf çûne ser nûra zelal carek were bayê şimal
Biskan ji ser dêmê vemal zilfan ji ber cotê esed
Seb-harê cotê cadiwan îro ji remza ebriwan
Dil girt û da ber gaşiwan ker kir li miskînan ;kebed
Dil girt û da ber xenceran kuştin nîgara dilberan
Me ji destê zilma esmeran dad û meded dad û meded
Dilber ji le'len Xwey şefaf da min meya gulgîn û saf
Deryayê eşqê qaf û qaf peyweste têtin cezr û med
Husna minez-zeh bê mîsal ser da libasê xet û xal
Sergeşte beyran maye lal ehmed ko dî nûra ehed
El-lah ji nûra sermedî yek qetreyek da Ehmedî
Şîrînî û remzek we dî medhûşî ma bet-ta ebed

ÇÎROKA TARÎXÎ:

# KLÊOPATRE

Klêopatre melika Misirê bû. Jiyîna xwe di evîn û hezkirinê de derbas kiri bû. Beriya wê Zilêxa hebû. Zilêxayê jî hez dikir; hezkirineke kûr û hûr. Ji Zilêxayê ve mihbeta dilan yek bû, ne dibû dido. Dilê Zilêxayê bi Ûsif pêxember keti bû. Zilêxayê ewçend jê hez dikir ko rojekê gava pêş Ûsif ve sêv dixwarin kêr da bû destên xwe.

Klêopatrayê gelek caran û ji gelek kesan hez dikir. Lê evînên wê gelek ne tajotin. Şevekê, kêm caran heta bi salekê. Lê bi Antonyo re Klêopatrê sebir bi xwe da û di evîna wî de ji salê wê ve jî çû.

Belê melika bedew carina şevekê, şeveke kin, spîşevekê hez dikir.

Klêopatrê di kelkela Havînê de, roja xwe di qesira xwe a penceregirtî de derbas dikir û ber bi êvarê, bi cêri û berdevkên xwe ve derdiket baxçeyên xwe ên bernil û temaşa hespên avê dikir.

Hespên avê bi xwe,, ji germê pelixî, cangiran û lingqerimî derdiketin qeraxan û devên xwe ên firehmezin bi vekêşan vedikirin û di dora mehînan de bi lavekariya evînê digeriyan; bi pozên xwe ên hestîfpehin pişta mehînên xwe dixurand û talastin; ew kêfxweş dikirin û bi şahîke şehwetengîz digel wan dadiketin avê; tê de winda dibûn. Pişti bihinekê, di wî milê avê de du sebwirên reş û lihevbadayî xuya dikirin.

Klêopatre, ra û damarên canê wê ji vê temaşayê şidandî û vegirtî, di ber xulamkoleyên xwe re derbas dibû, diçû qesira xwe.

Carina çavên wê bi xulamkolekî rift û lewend diketin. Wê şevê, ew xulamkole diçû xizmeta xanima xwe; pişta wê dida erdê, berê wê dida Xwedê û canê xanima xwe ê bişkbûyî, heta ko ew sist û nerm dikir difirkand û ew bedena zîvîn, di nav ciban de, bi milên xwe ên zexm badida û distrand. Bi vê firikandin û badanê qey hestiyên melikê diheliyan û canê wê ê nerm dibû gutlek hevîr; hevîrekî hinde çir ko deng jê dihat. Klêopatre kêfxweş, ewçend xwêh dida û germ dibû ko dilmest û bêhiş di xew re diçû; germiya Havînê di germiya canê wê de winda dibû.

Sibetir ew xulamkole peyda ne dibû. Xelkê serayê ji hev lê dipirsîn. Digotin, bi wezîfekê çûye beriyê. Lê carina cêriyên xewgeba Klêopatrê di sêlûna bemama melikê de çend dilop xwîn didîtin bi tirs, ker û lal li wan dife dkirin û xuldamkole nema ji beriyê vedigeriya.

∴

Rojekê, Klêopatrê, di dîwanxana xwe a mezin û zêrhelî de xwe li ser textê xwe dirêj kiri bû û ji bêsebriyê li dora xwe difedkirî û wek masiyê ko ketiye bejê bê kês û fesal xwe lev dida. Sidonye, cêriya wê a azadkirî, li ber lingên wê rûniştî, guhdariya emrên wê dikirin.

Klêopatrê bajena xwe bi xurtî hejand û ber bi jor rakir. Cêrî û koleyên ko li pêş wê ve qor girtî bûn, mana işaretê seh kirin, xwe xwar kirin erdê, raxer maç kirin û di pişt perde û stûnan re winda bûn. Klêopatrê gote Sidonyê:

— Ya Sidonye, tu nizanî çiqas bihîna min teng dibe. Ditirsim ko sira ko di dilê xwe de vedişêrim bi hilavêtina dilê min wê singa min der bike û wê bikeve ber çavên dinya û alemê...

Sidonyayê pêyên xatûna xwe ramîsand, rûyê xwe di ejnûyên wê da û got:

— Xanima min! tu destûra cêriya xwe didi ko biştexile û li dermanê xanima xwe bigere. Carina giyakî adetî dermanê derdekî zexm e. Ma ew çi sir e ko xanima min têşîne?...

Klêopatre: Tu qenc dizanî Sidonye ko ez gelek heji te dikim û dilê min ber bi te ve ye. Ev du sal in min tu ji cêritiyê azad kiri û min tu, di vê qesirê de, kiri miroveke aza û serbest; ji her mirovên aza azatir û serbestir. Û dîsan min destûra te da ko tu li gora kêfa xwe ji xwe re li mêrekî bigeri da ko ez wî ji tê re binim. Te ji xwe re evdekî reşik bijart. Min ew jî azad kir. Çire, ji ber ko heji te dikim.

Sidonye: Belê ezgorî, ez pê dizanim û dixwazim sezayî wê hezkirinê bibin. Û min Hamo, evdê reşik ji xwe re neqand...

Klêopatre: Belê Hamo, ev evdê reşik, jina mirekî Hebeşistanê ew ji min re diyarî rêkiri bû. Hamo di deryavaniyê de şehrazak derket û li Skenderiyê di cenkeştiyan de dixebite. Lê Hamo êdi ne kole ye, mêrekî aza ye û yê te ye. Çawan Sidonye tu bextiyar î?

Sidonye: Belê ez gorî ez bextiyar im, lê bextiyariya min bi tenê hingê tekûz dibe, gava min xatûna xwe jî bextiyar dît...

Klêopatrê destekî xwe dani ser serê Sidonyayê û ne hişt ko gotina xwe bibe seri. Sidonye lê fedkirî. Du hêstirên germ û girover wek du daneyên mirariyan di ser hinarikên Klêopatrê re ketin koşa Sidonyayê.

Sidonyê rabişte her du lingên xatûna xwe

û ew li ser hev çend caran maç kirin. Sidonyê gote xatûa xwe: Ez gorî, ka bêje min çi dest daye te.... singa min tirba sir û dildiziya te ye.

Klêopatre: Ma ew xortê ha, ew fermandarê romanî; yê ko heta bi Skenderiyê ez pê re rawestiyam naye bîra te. Belê ew fermandarê romanî, yê ko daye pêşiya ordiwa xwe û xwe li welatên Mad û Faris girtiye...

Sidonye: Mark Antonyo, ma ne ew e. Çawan nayete bîra min. Ew mirovê bextiyar. Belê bextiyar; lê ne ji ber ko serdarekî romanî ye; lê ji ber ko dilê melika Misirê meyldariya wî kiriye û îro melike riya wî dipê.

Klêopatre: Belê Sidonye, we ye, herwekî te gotiye; lê vegera wî bi derengî ket. Antonyo soza xwe da min, ewê jina xwe a romanî berde û li şûna wê ezê bibim jina wî. Emê herdu li ser textekî rûnin. Serên me di bin tacekê re wê bigehin hev; robelat û roava her du welat jî ewê bindestiya me bikin.

Sidonye: Min hêvî ji Xwedê heye ko daxwazên xatûna min tev de biçin serî.

Klêopatre: Tu çiqas delal î, Sidonye, Xwedê ji te bibihîse. Kes nizane, dinya ye, te dît tifaqek lê qewimî.... way li min ax, ezê... ma ezê çi bikim; ma bêt wî ez dikarim. De rabe em jê re diayê bikin, ji Xwedê hêvîdar bibin...

Klêopatre û Sidonye deverû li erdê dirêj dibin. Di sikûna şevê de dengê van her du jinikan wek zarina şîrmjekî geh bilind û geh nizim dibe. Heye ko Xwedê ew deng bihîstî bin.

⁂

Antonyo mizefer, serdest, bi mal û menal, bi hêsîr û xulam ji seferê vedigere; terka jina xwe a romanî Oktavyayê dide û li şûna wê Klêopatrê mehir dike. Lê Antonyo newêre vî îşî di nav qewm û milelê xwe de ilan bike. Ditirse ko xelkê wî lê rabin, jê higerin û bibin dijminên wî.

Lê Antonyo pêşkepikî xurt heye: Oktavyo. Oktavyo birayê Oktavyayê, yanî bûrayê Antonyo ye. Oktavyo ji alikî li heyfa xweha xwe digere û ji aliyê din dixwaze di Romayê de fermandarê tekane bimîne Antonyo bi nav û deng û bi mêraniya xwe di ser wî re ye. Oktavyo teqsîr nake û di şehnedêrekê de ji xelkê Romayê re dide zanîn ko Antonyo jina xwe a romanî berdaye û melika Misirê, Klêopatre xistiye şûna wê.

Ji milê din Klêopatrê bi xwe zor dida Antonyo û dixwest ko ziwaca wan bête ilan kirin. Di ber çavên reiyetên Klêopatrê ev zıwac ji melikê re rûmeteke mezin bû.

Antonyo, wî aşiqê şeyda nema karî bû li ber israra Klêopatrayê bisekine. Di sala 36an beriya miladê, Antonyo bi name û qasidan ji rohelê heta roavê da zanîn ko jina xwe a romanî berdaye; bûye mêrê melika Misirê û Klêopatre ketiye şûna Oktavyayê.

Meclisa Romayê giha hev; romaniyan bi yekdengiyê Antonyo xaîn ilan kirin û ji Oktavyo re swinda sedaqetê xwarin,

⁂

Çar sal ketin navê, beriya miladê bi 32 salan; bû şer. Eskerên Oktavyo û yên Antonyo li hev dixistin. Klêopatrê daweta cêriya xwe a azadkirî şahînet dikir. Ji wê dawetê re torinên dewletên dost, giregirên welêt tev de hatî bûn vexwendin. Klêopatre mêrê cêriya xwe Hamo, ew Hamoyê ko melikê ew azad kiri bû û xisti bû rêza torinan, ji xelkê re dida nas kirin.

Ji milê din Antonyo jî rabû, ji bo kêfxweşiya Klêopatrayê Hamoyê rêşik kire naxudayê[1] cenkeştîke romanî, cenkeştiya ko Antonyo bi xwe tê de hati bû Misirê.

Herçî cejin û şahînetên serayê hebûn, Hamo di hemiyan de hazir dibû û Klêopatre bêt Sidonyayê ne diçû tu seyranan û cêriya azadkirî hergav li ber textê melikê xuya dikir.

Sidonye jinikeke şehraza û xudan vên û mekir bû. Klêopatrê gelek caran pirsa xwe pê dixist, pê dişêwirî û ji ya wê dikir.

Rojekê Klêopatrê axîn û keserek li xwe anî û gote Sidonyayê:

— Sidonye, dihî ez û Oktavyo em di bexçê qesirê de digeriyan. Oktavyo ez kişandim ber siha darekê û ez li rex xwe rûniştandim. Oktavyo midekî xwe ker kir qet xeber ne da. Bi tenê bi awirine kûr, lê bişivîşk li min dinihêrt. Ez rind pê dihesiyam ko di xeyalxana wî re tiştine hewilnak derbas dibûn û wan ew têşand. Min xwe nema ragirt û jê pirsî. Ewî jî hertişt gote min. Belê Antonyo ditirse ko demek wê hebe, ez ji wî .û evîna wî aciz bibim û ezê dil bikim ko jê xelas bibim Hingê ezê jehrê bidim ê. Tu dizanî Sidonye dijminên me zehf in, li ber fikan sekinîne û li fîrsendekê digerin; da ko bavêjin nav min û wî. Ditirsim ko lingine rêvin pê li kaniya evîna me a zelal bikin û wê ava zelal bişeyloyînin û me tê de bixeniqînin.

Sidonye: Ez gorî, heq di destê te de ye. Lê nabe ko tu newmîd bibî û xwe bê tevdîr bavêjî himbêza qederê. Rome yên ko xiyahet û bêbextî lê kirine, wan bê eaza nahîle; zû an dereng cezayê wan dide. Antonyo bêbextî

[1] Naxuda: kumandarê vaporê; keptan.

# MEMOZÎNA EHMEDÊ XANÎ

— 7 —

FIHRISTI SERAXAZI KITAB, EXBAR Û EŞ'ARI NE'TI ELQAB Û ASAR E DI SÛRETI I'TIRAF Û IQRAR BI ECZ Û INKISARÎ DIGEL I'TIZARA GUFTARÊ.

Saqî bike camî asimanî
Raha weko rûhi cawidanî
Da em bigerîn dimaxi can ter
Yek lehze bi rahi rûhperwer
Saqî tu birêje camî mîna
Ava ko dikit zemîrê bina
Şadab bigêre qelbi mehzûn
Medbûş bigêre eqli mecnûn
Saqî bike kaseya micewher
Wê şîreyi me'sera miteh-her
Yaqût mizab û le'l û sey-yal
Wî dir-ri xweşab û xemr û tel-lal
Dirdaneyê xwe birêje navê
Yanî ereqa wekî gulavê
Dem dem bide desti meyperestan
Xelkê ko hinik ji dil di destan
Da camî dilan bibit mires-se'
Bezma terebê bibit mîsen-ne'
Vê meclisê meyxwira mudamê
Mestane bike ji new mudamê [1]
Mimkin ko ji feyzi bê nihayet
Yek qetre bibit li min inayet
Neş'a qedeha meya mirew-weq
Keyfa ineba rezî bi rewneq
Ewreng bikit di nefsê tesîr
Hasil bibitin di qelbî teşwîr
Yanî bikevête canî şewqek
Het-ta bigehête qelbî zewqek
Tesîri nefes bibit ji bo min
Tesîrî qefes bibit ji bo min
Tesfiyeya dil bibit me hasil
Hevdeng bibim digel enadil
Mirîê dili mirde bête perwaz
Bê perde bibit terane awaz
Dem şibheti bilbilan binalit
Geh şibhi enedilan bikalit
Ahan ko ve rê bikit sehergah
Hemware digel nesimê hemrah
Sed xunceyi dil ji ber bi ker [2] bin
Sosin bi zeban û ba xeber bin
Bişkoj bibişkivin ji xaran
Xûnrîz bibin di mey hezaran
Sorgul bigirin bi eşki şebnem
Bilbil bikenin li rexmi bemdem
Saqî bide min şerabi gulgûn
Bê deng û def û sedayi qanûn
Da şehne û mihtesib nebînin
Şahî hicivin çu xem nemînin
Teşwîş biçin ji qelbi mehzûn
Dîsan bibim ez ji nû digergûn
Mexmûr bibim bikirme lafan
Serxweş bibim bikim guzafan
Bêkêf neşim çu ez bibêjim
Dîwane bibim duran birêjim
Bedhal bibim siran bi der dim
Bêqal ji batinê xeber dim
Teşbîhi neyê bikim teren-nim
Tûtisifet ez bikim tekel-lim
Da keşf bibin ji min keramat
Meşhûd bibin li min meqamat
Şu'be ji meqami dil bi awaz
Gulgeşt bikin geweşt û şehnaz
Bê deng ji xewri dil bi aheng
Sed weng sed ebdan wekî çeng
Manendi ribabi bê kemançe
Deng bê ji defa me bê tebançe
Zihre bibibit newayi iş-şaq
Req-qas bibit li ewc nih taq
Sazi dili kul bi zêr û bem bit [3]
Sazendeyi eşqi Zîn û Mem bit
Şerha xemi dil bikim fesane
Zînê û Memî bikim behane
Nexmê we [4] ji perdeyê derinim
Zînê û Memî ji nû vejînim
Me'lûl biwin hebîb û aşiq
Îro he wekî tebîbi haziq
Derman bikim ez ewan dewa kim
Wan bê mededan ji nû ve rakim
Derdê di dilê Memê ciger-rîş
Zîna ji derûni dil cefakêş
Wê perdegiya efîfe mestûr
Wê bêguneha ji tehmetê dûr
Meşbûr bikim bı terz û islûb
Mimtaz bibin mihib û mehbûb
Ewreng bikim ji nû serefraz
Da bêne temaşeyi nezerbaz
Dilber li Memî bikin girînê
Aşiq bikenin bi derdê Zînê
Hemderd bikin bi wan sefayê
Bê derd bikevne helwelayê
Xelkê ko sine û ji dil saf
Pakîzesirişt û ehli insaf
Bilcimle bikin ji bo me tehsîn
Bêjin ko bi qencî hate tedwin
Xelkê ji « yihib-bibim » digergûn
Herçî ji ezel bi wî « yihib-bûn »
Da bên û bikin hikayetê gûş
Hindek bikirin xwe pê feramûş
Hindek bikirin bi can sema'ê
Hin pê bikirin ji dil weda'ê
Lê hêvî dikim ji misteidan
Herfan negirin li mistefîdan
Ev name eger xerab e ger qenc
Kêşaye digel wê me du sed renc
Newbawe ye tifl e newreside
Herçend nehin qewî guzîde
Lê min ji rezan ne kir temet-ti'
Mamendî dizan bi kes teteb-bi'
Newresti hedîqeyî fîad e
Me'sûm e efîf e xanezad e
Nûbar e eger şirin eger tal
Metbû' e ji rengi newi' etfal
Min hêvî heye ji ehli halan
Teqbîh nekin evan tifalan
Ev meywe eger ne avdar e
Kurmancî ye ev qeder li kar e
Ev tifl e eger ne nazenîn e
Nûbar e bi min qewî şerîn e
Ev meywe eger ne pir leziz e
Ev tifl e bi min qewî eziz e
Mehbûb û libas û guşware
Milkê di min in ne mistear e
Elfaz û meani û ibarat
Înşa û mebanî û işarat
Mewzû' û meqasid û hikayet
Mermûz û menaqib û dirayet
Islûb û sifat û mana û lefz
Esla ne kirin me yek ji wan qerz
Bilcimle netayici di fikr in
Dûşîze û newerûs û bikr in
Yareb mede destê xelki nasaz
Vê şahidê dilribayi ten-naz
Im-mid ew e ji ehli irfan
Ew dê ne girin li min çu herfan
Teşnî' nekin wekî xeyûran
Islah bikin li min qisûran
Eshabi kemal perdepûş in
Erbabi xerez di pirxirûş in
Me'mûl ew e ji ehlî razan
Ew dê ne kirin bi min tinazan
Ez pilewer im ne gewherî me
Xodreste me ez ne pérwerî me
Kurmanc im û kûhî û kenarî
Van çend xeberên di kurdwarî
Imza bikirin bi hisn û eltaf
Isxa bikin ew bi semi' insaf
Eshabi xerez ko guh bidêrin
Eyban bi kerem li min veşêrin
Ava riwê şairi nerêjin
Ger mimkin e yêke qenc bibêjin
Sehw û xeletan nekin te'ec-cib
Te'wil bikin ji bo te'es-sib.

## NOT

[1] Di vê malikê de du « mudam » hene û her du jî bi erebî ne. « mudam » a pêşîn bi mana hergav e. « mudam» a didowan bi mana şerabê ye. « ji new mudamê » yanî ji nû ve serabê.

[2] Ker bi mana perçe, kerî ye û « k » tê de ji « k » ya adetî stûrtir e, Ji bo şanîkirina stûriyê mirov dikare «h» yekê bide ber û di şikilê «kher» de binivîsîne.

[3] « zêr » an « zîr » û « bem » du gotinên mûsîqiyê ne. «zêr» bi mana zirav û « bem » bi mana stûr e. Herwekî bi farisî tîz û pes dibêjin.

[4] « Nexmê we » ye an « nexmê wan » e. Ji ber ko qala Mem û Zînê dike û berê xwe dide xwendevanan.

li Romayê kiriye. Lê qedera te bi qedera wî ve girêdayî ye. Divêt tu evîna xwe di singa wî de bi xwedî bikî û divêt ewlebiya Antonyo bêxî destê xwe.

Klêopatre: Belê, lê çawan û bi çi awayî. Ji dihî ve ez bala xwe didim û tête bîra min

ko midetek e Aantonyo destê xwe nade tu fıraxên xwarinê yên ko min jê ne xwarine û piyana ko min jê venexwariye nake devê xwe. Jê dixuye ko di her tiştî de jehrê dibîne.

Sîdonye: Sibe ezê ji te re rêke welê şanî bikim ko mêrê te ê romanî. wê bizane ko jinika ehmeqtir dikare mêrê jîrtir bixapîne.

***

Weke hero, Antonyo û Klêopatre, berî ber bi behirê, di şehnîşîna qesirê de rûnişlî, şîva xwe dixwarin. Klêopatre ji her fıraxê parîk dibir û piştre ew dida mêrê xwe. Piştî ko xwarin û vexwarin; ketin himbêza hev û xwe li ser textekî dirêj kirin. Klêopatre li bêjina mêrê xwe a zirav wek dargerîngeke ter aliya bû û ew li sînga xwe dişidand û rûyê wî bi şopa maçikan sor dikir.

Her du jî serxweş bû bûn. Piyanên şerabê, li ser hev, bi ser xwe ve dikirin. Klêopatre rahişte piyaneke mezin û ew heta bi nîvî vexwar. Gava nîvê din dida Antonyo, serê xwe, hinek hejand û pelek ji gula ko bi pora wê ve bû ket nav piyana şerabê. Antonyo ev piyan jî wek piyanên din bire ber devê xwe. Klêopatrê destê wî girt û bi tirs û lerz da ber qîran û got: « Vê şerabê vemexwe ». Rû û eniya Antonyo têk ve çûn. Antonyo bi tirs û xezeb li Klêopatrê dinihêrî. Klêopatrê banî Sîdonyê kir û piyan da ê. Sîdonyê koleyek anî û piyan da destê wî. Bi emrê Klêopatrê kole şeraba piyanê vexwar û pistî çend deqîqan mir.

Klêopatrê milên xwe ên zîvîn li stoyê Antonyo gerand û got: « Hey sersem, tu dibînî, min dilê xwe li te xerab bikira; min dikarî bû bi pelê gula serê xwe jehirê bi te dim û te bikujim ».

Antonyo deng ne kir lê qenc zanî ko pelê gula serê Klêopatrê jehirdar bû û heke Klêopatrê bixwesta bî çi awayî hebe karî bû jehirê bidiyê.

Jin û mêr xwe bi tenê kirin, çira vemirandin û ketin himbêza hev. Bi tenê heyveke çardeşevî wek rûyê mirovekî li xwe heyirî di nav perdeyên qesirê re li wan temaşa dikir.

***

Şer dom dikir. Eskerên Oktavyo û yên Antonyo di bej û behiran de li hev dixistin.

Didowê Îlonê, 31 sal beriya miladê.

Cenkeştiyên Oktavyo û yên Antonyo û Klêopatrê di behira Yewnanîstanê, di Ekzyomê de gihane hev û li hev dan. Ji nişkekê ve cenkeştiyên misrî bi şûn de vegeriyan. Stola Oktavyo da pey. Yên Antonyo direvîn. Di wê rojê de xuya kir ko Oktavyo wê zora Antonyo bibe û kişwerên rohelê û roavê bêxe destên xwe.

Herçî Klêopatre, di nav bîst û çar saetan de bîst û çar caran li mêr û yarê xwe diqulipî ew dixist xeydê, ji xeydê radikir û ew tavête dexsê; ew li ber lingên xwe digerand û ew di taya evînê de sermest û bêhiş dikir.

Ma dîsan ne ev Klêopatra yewnanî bû ko qeyserê Romayê Jûlyûs Sêzarûs xisti bû dava evîna xwe û paşê lê qulipî û bêbextî lê kiri bû.

Niho dora Antonyo bû. Antonyo ji keti bû tora yewnaniyê û îro dibû qurbana xiyaneta wê, Niho Klêopatrê Oktavyo da bû ber çavên xwe, bûra û neyarê mêrê xwe. Oktavyoyê ko zora Antonyo dibir.Evîn û zeferdariya Antonyo kevin bû bû; wek dîwarên qesireke, zêrhelî yên ko zêrên xwe diweşîne erdê û ew di bin lingan de dibin ax û xwelî.

Jê re mizeferekî nû û agirekî sor û bê xwelî diviya bû. Ew mizefer jî Oktavyo bi xwe bû. Oktavyo Misir û kişwerê wê dê bistanda û wî ew bidana ser imperatiriya Romayê. Klêopatre wê bibiwa melika Romayê ji.

Antonyo bêbextiya Klêopatrayê bîr dibir, lê birbirîneke bi derengî; tîr ji kevanê fılitî bû.

Ev bû bû salek ko cenkeştiyên Klêopatraye di Eksiyomê de sikesti bûn û ji ber stolan Oktavyo baz da bûn.

Yekê Tebaxê, sih salî beriya mîladê.

Eskerên Oktavyo gihaşti bûn deriyên Iskenderiyê û li eskerên Antonyo digeriyan.

Ev şerê dawîn bû. Heke Antonyo nikariya eskerên Oktavyo. bişkenîne û ordiwa wî bi şûn de vegerîne Oktavyo wê biketa payîtexta Misirê û heta tirbên fırewnan jî jê re bejin û sto wê xwar bikirana. Berî herkesî melika Misirê Klêopatrê.

Klêopatre ditirsî; ma Antonyo bi bêbextiya wê ne hesiya bû. Klêopatrê xwe di hewranikî reş pêça û ji derikî qesirê î nizim derket û gote Sîdonayê:

— Min ji te pêve tukes navêt

Sîdonyê: Ma Hamo ?...

Klêopatrê: Hamo... belê, bila ew jî bi me re bêt. Sîdonye min bibe û min di nav tarîtiya tirbên qral û imperatoran de veşêre. ( berê xwe da Hamo ) Te emrên min bi temamî bi cih anîne?

Hamo: Belê ezbenî, ne kumandarên eskerên bejî, ne ji yên behirê ji ya Antonyo nakin, kes dest nabe xwe....

Klêopatre: Sidonye, Hamo! min sehiw

girtiye; ez ditirsim. Belê ez ditirsim ko Antonyo bide pey min û min bigehîne cezayê ko ez sezayî wî me.

Klêopatrê şeva xwé di nav tirbên hikimdarên Misirê de derbas kir. Leşker û stola Oktavyo zor dida deriyên Skenderiyê.

Mark Antonyo, li Klêopatrê digeriya; lê ew peyda ne dikir. Antonyo didît ko her tişt winda bûye. Antonyo şûrê xwe kişand û ew di qelbê xwe, di wî qelbî re ko hêj evina Klêopatrê tê de xwe tev dida derbas kir û ew fermandarê navdar bê nav û deng, bê şan û rûmet mir.

Oktavyoyê mizefer ket Skenderiyê û emir da ko melika Misirê a bedew, wê melika ko qeyser û fermandarên Romayê tac, şûr û rûmetên xwe datanîn ber lingên wê, jê re bînin û bi keziyan bi ereba wî ve girêbidin û di kûçeyên Skenderiyê de rakişînin.

Klêopatrê ev bihîst û zanî ko bimaya, bi tenê bi vî awayî wê bigihaşta Oktavyo.

Esker û berdevkên Oktavyo ketin kûçe û kolonên bajêr û li melikê geriyan. Lê li şûna Klêopatra zindî, cendekê wê peyda kirin.

Hamo, jê re marekî reş î dirêj peyda kiri bû. Klêopatrê deverû xwe li erdê dirêj kir û mar berda ser xwe. Mar ji wek aşiqên wê dî dora wê de geriya, canê wê ê tenik çend caran bihin kir, di bin berzika wê re xwişiya, li navtanga wê aliya û xwe gihand pora melikê û jê daket bin erzîna wê; sîng û berê wê tev da, gerdena wê kire devê xwe; ew bedena narîn û nazenîn carekê, du caran li çermê xwe ê reş şidand.

Klêopatrê heta hingê xwe tev ne da bû. Gava bi germiya devê mar hesiya bi carekê de xwe hilavêt. Bi vê tevdanê di bin melikê de cih li mar teng bû. Mar bi gerdena melikê pihêt girt û bi zengelora wê veda.

Klêopatra ko di himbêza aşiqên rift û lewend de bi xwedî bû hû û kumê gelek camêran xistî bû balgihê xwe, bi maçika marekî reş î sik, bê xwedî û xudan mir.

Herçî Hamo û Sîdonye, kelaşên van her du xadimên sadiq û wefakar li ber cendekê xatûna xwe nobet digirtin.

Dihok: 12 Tebax 1942 BIŞARÊ SEGMAN

## MALIKEKE HAFIZ

**Dîwana Hafizê şirazî, çi bi şihir çi bi tesewif, gelek bi nav û deng e. Em îro ji wê dîwanê, malikekê berpeyî xwendevanên xwe dikin. Heke me ev malik bi firehî wergerande kurdmanciyê, Hafiz dibêje:**

**Haciyê reben daye riya kehbê û diçe. Herçî ez, di cihê xwe de rûniştî, lê ez dixwazim rû û dîndar bibînim.**

**Ewî berê xwe daye xênî û li çar diwarên wî digere. Herçî ez, armanca min xwediyê xênî ye û ez lê digerim.**

## MARŞA FELATÊ

Daxwaza me ramana me girtina welat
Me jîn navê bi bindestî her divê felat
Welatê me Kurdistan e pêgera şêran
Ew qada şer û nijdan e landika mêran
Ji navê me tête zanîn şelpên mêranî
Ma hewceye ko em bêjin cîhan dizanî
Ji Keyqubad heya digihê Astiyaxê zor
Med serdest bûn di Asya da li jêr û li jor
Bizdandi bûn Selahedîn heft qiran bi şîr
Piştî wî jî di me rabûn pir şah û emîr
Me bav û kal ketine xew serekî dirêj
Dirêjî nav welêt bûne pir destên qirêj
Me fêl ev e ko bibirin wan destên zorker
Di welêt da qet naxwazin hevrî û berber
Sêzde sal in xwîn dirêjin ji xwe û neyar
Me dest kêşa ji xebatê û cot û cobar
Xebata me her dê ev bit şer û mêrkuştin
Di welêt da ji neyaran kesek nehiştin
Em leşker in sondxwarîne ji bona welat
Me jîn navê bi bindestî her divê felat.

Şam: 28 Tîrmeh 1938 OSMAN SEBRÎ

## REWŞA DINYAYÊ

ŞERÊ ÛRIS — Par ûrisan eleman ji Rostovê bi şûn de vegeravdi bû û pê êrişa ûrisan ya Zivistanê dest pê kiri bû. Îsal eleman li Stalîngradê, piştî ko ketine birekî bajêr, sekinîne. Ev bû qederê mehekê ko eleman ketine kûçe û kolanên bajêr û di nav xanî, qişle û febrîkan de şerê ûrisan dikin. Herçî ûris ne bi tenê li ber xwe didin, lê radibin berbicûman jî û carina avahiyên ko berî nîvro ji dest dane, piştî nîvro wan bi şûn de vedigirînin.

Li 9ê mehê êrişa elemanan sekinî. Çire û êriş yekar sekiniye an piştî çend rojan ewê ji nû ve dest pê bike? Ev ne xuya ye. Li 9ê mehê elemanan danezanek belav kir û tê de got: Ji ber ko ordiwa elemanî di bajarê Stalîngradê de niqteyên mihim xistine destên xwe ji îro û pêde di şerê vî bajarî de tabiye dê bête guhartin. Me topine mezin anîne Stalîngrdê. Emê bi van topan taxên bajêr ên mayîn yên ko hêj di destên ûrisan de ne texrîb bikin.

Bi rastî jî ji hingê ve danezanên şer qala şerê segmanan nakin. Herçî danezana elemanî ya 13ê mehê yekcar qala şerê Stalîngradê ne kir.

Eleman herçend gihaşti bin Stalîngradê jî li bakur û li nîvro erdên dora bajêr di destên ûrisan de ye. Ordiwa elemanî piştî ko li çemê Don derbas bûye wek pozekî ber bi Stalîngradê û li dora wê dirêj bûye. Yanî ordiwa elemanî bajar mihasere kiri be jî ji rohelê pêve her sê aliyên bajêr berdayî ne û ordiwa Tîmoşenko ji dûr ve û nemaze ji bakur û ji nîvro li ordiwa elemanî wer hatiye. Herçî hêla bajêr a rohelê; ji xwe di wê hêlê re çemê Volgê derbas dibe.

Tîmoşênko li bakur û li nîvro ev bûne qederê du heftan rabû berbicûmê. Di destpêkê de hate bawer kirin ko Tîmaşênko bi van berbicûman dixwaze

barê mîdafîhên Stalîngradê sivik bike. Lê piştre xuya kir ko plana Tîmoşênko jê meztir û firehtir e. Ordîwa Tîmoşênko çi li bakur çi li nîvro berê xwe daye çemê Don. Bi vî awayî Tîmoşênko dixwaze bikeve pişta ordîwa elemanî ya ko di Stalîngradê de ye û wê ji giraniya wê qut bike. Li gora nûçeyên kaniyên rûsî pêşdarên ordiwa Tîmoşênko di hin deran de gihaştine çemê Don.

Herçî şerê çiyayên Qevqasê, di vê qadê de jî, vê paşiyê eleman hesêb fikarî bûn pêş ve herin. Di vê qadê de ordiwa elemanî bi du baskan lêk vebû ye. Baskekî peravên Behira-reş girtiye û qesta nîvro dike. Ev baskê ha dike nake xwe nagehîne Toapsê. Nemaze piştî ko stola rûsî esker daxistine navbara Novorosîsk û Toapsê eskerên romanî yên ko di vî baskî de ne bêgav mane û ji êrîşê derbasî mîdafehê bûne û ûrisan bi berbicûmekê çend gund bi şûn de vegerandine.

Di nîveka vê qadê de ordiwa elemanî ji Armavîrê ve riya besin û boriyên petrolê girtiye û dirêjkî, wek zimanekî hatiye heta Mozdokê û jê dirêjî Grozniyê dike. Herwekî xwendevanên me dizanin di Grozniyê de bîrên petrolê hene. Di van panzdeh rojên paşîn de eleman ber bi bîrên pêtrolê ve bi tenê 22 kîlomêtiran pêş ve çûne. Di vê qadê de jî ûris radibin berbicûmê û xisarine mezin digehînin elemanan û carina dikevin çeper û kozikên wan jî.

Heke me çavên xwe li kirdeyên şerê ûris gerand em dibînin ko îsal miqawemeta ûris li gora par gelek xurt bûye û birba êrîşa elemanan kêm kiriye.

ŞERÊ PESÎFÎKÊ — Di vê qadê de eskerên emêrîkanî û ewistralî şerê xwe xweş dikin. Di giravên Silêman de eskerên emêrîkanî yên ko daketine bejê pê didin erdê. Di Gîna-nû de ewistraliyan japon şkênandine û didin pey û wan ji Pormorsî bi dûr dixin. Pormorsî ji bo hevalbendan ehemiyeteke mezin heye. Japonan ji mêj ve dixwest Pormorsî bêxin destên xwe û bi vî awayî hêj bêtir nêzingî li Ewistralyayê bikin û pê riya Ewistralye û Emêrîkê bibire. Lê plana japonan ne çû serî û niho ji Pormorsî bi dûr dikevin û ewistralî nêzingî li Kakodayê dikin. Li gora nûçeyên paşîn eskerên ewistralî jî Kakodayê bi tenê 18 kîlomêtiran dûr in.

ŞERÊ ROAVÊ — Şerê vê eniyê şerê balafiran e û di vî şerî de ingilîz bi temamî serdest in. Balafirên ingilîzî bi şev û bi roj di ser Elemanyayê û di ser welatên ko elemanan ew vegirtine re difirin û xesarine mezin digehînin bajarên wan welatan. Vê paşiyê merêşal Göring di gotareke xwa de qala van êrîşan kiriye û gotiye: Ingilîz niho li bajarên me didin. Lê piştî ko me îşê ûris safî kir emê berê xwe bidin Ingilterê.

Ji vê gotina Göring dixuye ko balafirên elemanî ancax dikarin şerê ûrisan bikin û di yek wextî de nikarin dirêjî Ingilterê jî bikin. Ji xwe Hitler ne dixwest ko di çend eniyan de şer bike. Lê qelsiya talyanan û xurtiya ûrisan ew bêgav hişt û îro ordiwên elemanî li Efrîqê jî şer dikin.

ŞERÊ MISIRÊ — Di vê eniyê de jî nemaze şerê balafiran e. Balafirên ingilîzî û emêrîkanî li benderên efrîqayî wek Bingazî û Tobriqê û li benderên girava Girîtê didin. Herçî eleman û talyan, ew jî zorê didin Maltayê. Bombardimanên Maltayê sist kirî bûn. Lê ji 11ê vê mehê ve balafirên mihwerê ji nû ve giravê bi xurtî bombaran dikin. Li gora danezanên ingilîzî li 12ê mehê di van bombardimanan de ingilîzan 30 balafirên mibwerê avêtine erdê û pênciyên din birîndar kirine.

Ingilîz û emêrîkaniyan vê paşiyê gelek esker, top, tang û balafir anîne qada Misirê. Welê dixuye ko dewletên mihwerê jî dikin esker û cebirxanê bînin vê qadê. Ji lewre balafirên wan li Maltê didin da ko di vê navê de vaporqefleyên wan ji Siçîlyayê derbasî benderên efrîqayî bibin.

Şam: 15 Çiriya-pêşîn 1942 NÊREVAN

## PÎROZIYA CEJINÊ

— Ji xweyiyê Hawarê re —

Roj bête der, al sor û zer, ev ro li ser banê te bit
Herdem bijî bi kêf û xweşî cejna te jî pîroz bibit
Herdem şeva te ron bibit j'dil şahiya te xweş bibit
Çend roj hene her cejne bit cejna te jî pîroz bibit.

Hindî ko ev dinya hebit b'rûyê bilind b'demê sipî
Her hakim û şahê me bî cejna te jî pîroz bibit
L'bexçê gulan l'nav simbilan seyran bikî şahê dilan
B'kêf û sema dûr bî j'xema cejna te jî pîroz bibit.

Heyva li ser te çarde bit daîm Bihar l'erdê te bit
L'te çi miraz e her we bit cejna te jî pîroz bibit
Hindî ko padîşah hebin hemî li ber payê te bin
Daîm di ferwara te bin cejna te jî pîroz bibit.

Dora me hat hon b'kin xebat ev ro l'welat rojê helat
Ala veda şewqê li me da cejna te jî pîroz bibit
Çak hilkevit roj derkevit dijmin b'revit yan jî b'kevit
Memdûh divêt ev hale bit, cejna te jî pîroz bibit.

Dibok: 20 Îlon 1942 Şêx Memdûhê Brîfkanî

## ENIGMES

173 — Ser bi jêr dibe, tijî dibe, ser bi jor dibe vala dibe ( Kum ).
On le renverse, il s'emplit, on le redresse, il se vide ( le bonnet ).
174 — Serî di te de, kok di dê de ( guhan ).
La pointe en toi, la racine dans la mère ( le sein )
175 — Sêniya savarê li ser guhê darê ( hinar ).
Un plateau de blé cassé sur la branche de l'arbre ( la grenade ).
176 — Şaşika delala gindirî newala ( zîpik ).
Le turban des belles roula dans les vallées ( la grêle ).
177 — Şev têt, şemal têt, gah têt, gopal têt, ji nik padişah û siltanan têt ( hêv ).
La nuit vient; le flambeau vient, des fois il est courbé; cela vient de chez les rois et les sultans ( la lune ).

TAWÛSPARÊZ

Kiriyariya Hawarê 500 Qirûşên Sûrî
Xwedî û gerînendeyê bepirsiyar: Mîr Celadet Alî Bedir-Xan . Şam—Sûriye
Directeur Propriétaire: Emir Djéladet Aali Bedir-Khan, Damas-Syrie
ŞAM — ÇAPXANA SEBATÊ — 1942

SAL 10
HEJMER 51
YEKŞEMB
15ÇIRIYA PAŞÎN 1942

# HAWAR

ANNÉE 10
NUMÉRO 51
DIMANCHE
15 NOVEMBRE 1942

KOVARA KURDÎ ✶ REVUE KURDE

DI VÊ HEJMARÊ DE



# TEFSÎRA QURANÊ

199 — Ji xudankitêban, heçî ko baweriya xwe bi Xwedê û bi Qurana ko ji we re dahatiye û bi Tewrat û Incîla ko ji wan re hate şandin, anîne û ji Xudayê xwe tirsiyar in û bi ayetên Xuda tiştine erzan nakirin, qedrê ayetên Xuda digirin, sewaba wan li nik Yezdan heye. Xuda hisabê emelên evdên xwe zû diqedîne.

200 — Gelî bawermendino..... Gava dikevin tengiyê, xwe sist û pîs mekin, xudansebr bin, dilê xwe xurt bikin, hêj mêrtir bibin, berê xwe bidin dijminên dîn û welatê xwe, sînorên welatên xwe bi peyarî be bi siwarî be ji dijminên xwe biparêzin, gava zorê didin we, pê bidin erdê, ji Xudayê xwe tirsiyar bin, li gora emrê wî bimeşin da ko hon serfiraz û serbilind bibin û bigehin felat û xelasê.

## IV

## SÛREYÊ JINAN

SED Û HEFTÊ Û PÊNC AYET IN,
DI MEDÎNÊ DE DAHATIYE
BI NAVÊ XUDAYÊ PAK Ê DILOVAN Û MIHRIVAN

1 — Gelî mirovino.... Ji Xudayê xwe tirsiyar bibin, ew e ko hon ji nefsekî, Cenabê Adem, afirandin û ji perasûya Adem, jina wî Hewa xuliqand û ji wan her diwan, jin û mêrên bê hejmar anîne wicûdê. Ji Xwedê bitirsin, hon bi navê Xwedê ji hev û du hêviya qenciyê bikin; qedrê mirovên di xwe bigirin. Xuda we disitirîne, ew sermiyanê we ye.

2 — Gava sêwî digehin bilûxê, malên di wan bidin wan, û malên wan ên hêja bi yên xwe, ên nehêja meguherînin; û malê wan têkilî malê xwe mekin û mexwin; ev xwarina malê sêwiyan guneheki gelekî giran e.

3 — Heke hon, ji qencî û edaleta xwe ne ewle ne, sêwiyan ji xwe re mekin jin, ji jinên ko hon diecibînin, ji xwe re werînin, yek, dido, sisê an çaran. Eger hon disa ne ewle ne ko bikarin, di nav heyna jinên xwe de, bi edaletê bimeşin, ji xwe re cêriyekê werînin.

Anîna jineke bitenê an standina cêrîkê îşê we û meşa we li gora edaletê sivik dike.

Mehra jinikê, jê re, bi dilxweşiyê bidin, heke jinik jê bi rizayê xwe parekê vedigerîne we, jê bibin û bixwin û pê şa bibin.

4 — Divê bergerê sefîh û bodileyan, malê wan nedin destê wan, ew mal emaneta Xuda ye, lê divê ji wî malî nefeqe û heqê cilên di wan bidin û bi sefîh û bodileyan bi delalî baxêvin û bimeşin.

5 — Gelî welî û bergerên sêwiyan... Eqlê sêwiyan heta gihaştina wan biceribînin, ko dema gihaştinê hat û bûne panzde salî û bîrewer û îşên xwe seh kirine, malê wan bidine wan. Malê sêwiyan bi fikrên xirab, weke sibe sêwî dê mezin bibe û malê xwe ji min bistîne, lez mexwin, pê destbelaviyê mekin. Heke bergerên sêwiyan dewlemend in, divê ew bi navê heqê bergeriyê, ji malê wan tu tiştî nestînin, heke hewcedar in, jê bila tiştekî kêm, li gora malê sêwî û nefeqa xwe bibin; ko sêwî mezin bûne û hon malê wan teslîmî wan dikin, divê şahid hazir bibin. Bizanin ko hisabdarê mezintir Xuda ye; diristî û nediristiya emelê we, ew dizane; ji Xudayê xwe tirsiyar bibin.

# DÎWANA MELÊ

— 35 —

Ah li destê vê sirê dil ji mey hewale kir
Herçî li min kirî mela cama meya du saie kir
Şeng û nebatê meşiha misk û zibadê weşiha
Rûmeh dibê peyane hêj zêde li min delale kir
Çiçek û gul sehergehan nesterin in dil xergehan
Têk da ji misk û mawerê mahe xunav û jale kir
Dêmê û biskê xumriyan taw di zilfê sutriyan
Mane temamî kesk û sor bedre li dorê hale kir
Dûr kirim ji sinbilan çiçek û bişkok û gulan
Dil ji, me rengê bilbilan şibhetê daẍ û lale kir
Pîrê meẍan ji şişe ê da me sefîneke meyê
Şikir ji Xwedê ko qelzemek min ji xwe ra qebale kir
Xunce leba j'rengê gulê dêmê li ser nima melê
Şibhetê bilbilan seher lew me fiẍan û nale kir

— 36 —

Derê meyxane ya eşqê seher arif ziyaret kir
Bi abê çeşmê xûna dil widû' best û teharet kir
Werin cama hilalê da ji eksê mahî nû bînî
Ko xanê mihr û cergê çerx û xan roze xaret kir
Di mizan qewsê mahê nû bi wechê dilberê min dî
Ji çeşmê goşe ê ebrû bi dewrê cam îşaret kir
Bi ebsaran nezer min çû ji çerxê qewsê ebrûyan
Şikirxwazim ko çavan kari ber eynê besarst kir
Ji ber dêmê niqab avêt û destûra tewafê da
Bi se'yi beyti îcramê û min eswed ziyaret kir
Di dîdarê hezaran can nisarê meqdemê yar im
Kesê canan bi can bînit di eşqê wî ticaret kir
Bi dînarê denî zînbar da yarê xwe nefiroşî
Kesê Yûsif firotî wî di alem da xisaret kir
Tenê ew secdeya şikrê tebit mihrab û qewsênan
Ko dilq û şemli sec-cade hi wê avê xesaret kir
Di behsa le'lê leb her xam narit teb'ê elmasî
Welê te'sir û feyz û mihr û tedbîrê heraret kir
Di îcaza beyanê da suxen ger hête însafê
Dizanit mixteser herkes melê sihir û îbaret kir.

# MÎR Û NÊÇÎRVAN

Dibêjin rojekê mîrê Botan bi çend siwarên xwe re derketi bû geştê. Mîr û peyayên xwe gihan navsera çiyakî bilind. Mîr nêrî ko peyak li ber kevirekî mezin rûniştiye. Mîr ji hogirên xwe re got; em herin cem vî peyayî ka ew çi dikê. Çûn cem peyê; mîr jê pirs kir û got:

M — Peyayê delal tu li ber vi berî çi dikî
N — Ez nêçirvan im ezbenî
M — Kanî tajî û tolên te?
N — Ez li ber kewan im ezbenî
M — Ma tu çawan bê tiving kewan bigirî?
N — Kewê min ê ribat heye
M — Çawan tê bi kêw kewan bigirî?
N — Min dav li dora wî vedane;. kewê min wê bixwîne, kewên çiyê hemî wê bikevin davê ez jî ezê wan bigirim.
M Tu çi xwarinê didî kewê xwe
N — Ez kuliyan didim ê ezbenî

Mîr li kêw nêrî û got: Hey heywanê bênamûs, tu çawan heval û hogir û welatiyên xwe bi destê xwe ji dijminan re dikî davan. Dijminê ko tu li cem. î, te dikê rekîbê û eger tu aza biwayi tê hemî tişt bixwaran, tiştên hêja û bêhejmar.

Mîr şûrê xwe deranî û kew ker ker kir û gote xelkê dora xwe:

— Ez ji kesê ko heval û hogirên xwe bi destê xwe dikê davên dijmin hez nakim. Heqê wî kesî kuştin e.

Ji vê çîrokê tête zanîn ko em ev kew in. Ne xwe ji me re Mîr û şûr divêtin. Bêî wan yekitiya me çênabê. RASTO

Telşeir: 10—10—1942 M. EMÎN SILÊMAN

# TIŞTÊN

## KO DI DANEZANAN DE TÊNE GOTIN

Ev şer ji nû ve me hînî erdnigariyê dike. Lê carina di danezanên şerevaniyan de navine welê hene ko di xertan de jî peyda nabin. Ji ber ko ew deverine welê ne ko an tê de rûniştiman nînin an hebin jî gelek hindik in û carina jî ew rûniştiman koçerên ereban in û di reşmelan de rûdinin. Ji xwe ji vî wesfî xuya ye ko em îro qala qada şerê Misirê dikin. Ev in çend serenavên qada şerê Misirê:

EL-DEBEH — Satsyoneke rêhesinê ye. Li roavaye Elemeynê û jê heftê kîlomêtirî dûr e. Di dora stasyonê de çend konên ereban hene. El-Debeh nemaze bi ava xwe a vexwarbar hêja ye. Ji Bircilerebê heta hire tu av bi qast ava El-Debehê ne şêrîn e. Di sehrayê de navê El-Debeh gelek caran tête peyda kirin. El-Debeh bi mana keftar e. Ji lewre heçî erdê ko bi gir û mitikên rex hev xarûmaro ne bedewî navê El-Debeh lê dikin.

XEZAL — Di beristanên Erebistanê de mirov gelek caran rastî navê Xezalê têt. Ereb li deverên ko tu avahîgeh lê nînin û tê de xezal peyda dibin, navê xezalê lê dikin. Birel-ẍezal, Bira xezalan; Derbel-ẍezal, Riya xezalan; Erdel-ẍezal, Erdê xezalan. Xezala ko di danezanên qada şerê Misirê de tête dîtin dikeve roavayê Elemeynê û jê 35 Kîlomêtiran dûr e.

DÊR-EL-MENASIB — Dêr hewekî nas e ibadetgaha filehan e. Lê erebên çolê navê dêrê li deverine din jî dikin; li xirban û li komên kevir û teht û şaxuran. Herçî Dêr-el-menasib li bakurê Himêmatê korteke mezin e û di dora wê de latin hene. Ji lewre ev nav lê kirine. Heke me ev nav bi kurdmancî mana kir, em dikarin bibêjin Dêra kevirên daçikandî.

CALO — Di orta Lîbyayê de waheke kevin e, û dikeve nivrorohelê Bingaziyê. Talyanan tê de ji bo mihacirên talyanî yên ko ji Îtalyayê hatine, xanî û ji bo eskerên xwe qişle çêkirine. Berî hezar salî melikên fatimî tê de qesirin çêkiri bûn û ew carina dibatin Caloyê û midekî xweş lê dimanî. Calo di qûma sehrayê de dimîne giravekê. Av, mêrgine xweş lê hene. Beriya şer kerîne pez û dawaran tê de diçêrîn.

ÇÎROKA TARÎXÎ:

# SELAHEDÎN
## Û RIÇARDÊ ŞÊRDIL

Selahedîn kurd bû Kurdekî hêja, zana, xurt û zexim, camêr û dilqewîn, xudan vên û rûmet.

Ewropayiyan tu siltanê rohelê dananîne ber qran û imperatorên xwe, ji Selahedîn pêve

Belê Selahedîn kurd bû; dikarî bû xizmeta miletê xwe, xizmeta miletê kurd bike .. ne kir.

Dikarî bû heyîna miletê xwe bêxe ser hîmine qewîn û wî bike milet û dewleteke biserxwe û abadîn... ne kir.

Dikarî bû miletên din di xizmeta miletê xwe de bixebitîne û miletê xwe li şûna miletên din bigehîne kişwerkişayiyê..... ne kir.

Dîsan, Selahedîn, serdarê kurd, siltanê ereb dikarî bû di xizmeta ereban de jî kurditiya xwe car caran bîaniya bîrê, ew bigota xelkê û ew-nav, nav bi tenê payidar hikira.. . Selahedîn ev jî ne kir.

Selahedîn, islamiyet di ser milet û nijadê xwe, di ser hertiştî re girt û qewmê xwe, bijarteyên miletê xwe di riya islamiyetê de bi kuştin da û miletê ereb bi eskerên ko ji çiyayên Kurdistanê dadihatin, gihande kişwerkişayiyê.

Mihemed pêxemberê Xwedê bû; nezan û nexwendî. Xwedê ew gihand û elimand û bi destê wî mislimanî li dinyayê belav kir.

Islamiyet qeliha bû. Zora mîrên ereban li ber êrîşa şevalyeyên ewropayî ên zirehpûş çû bû. Hespên tazî ji ber hespên rimbazên fireng baz didan. Ereban ji avahiyan xwe da bû paş. Qralên Frengistanê keti bûn erdê miqedes.

Selahedîn, ew kurdê bixwegihayî, ji çiyayên Kurdistanê, daket beriyên Erebistanê, zora şevalyeyên ewropayî bir û destê xwe da islamiyeta ko gihaşti bû cankeşiyê; destê wê girt û ew rakir, islamiyet ji piyan sekinand. Şopa ola Mihemed ji nû ve şên û ava kir. Ereb vegeriyan bajar û şaristanan.

Riçardê Şêrdil qralê Ingilistanê bû. Mêreki qenc; bi dil û vên û bi destê xwe şêr. Wek hemî qralên Frengistanê Riçard jî li ber Selahedîn ji desthilanînê ket. Lê Selahedîn dostê neyarê xwe, dostê neyarê qenc bû. Riçard nexweş ket. Selahedîn kete belgihê bijîşkan û ew derman kir.

Riçard dîsan wek hemî qralên ewropayî, gava ji welatên rohelê, ji erdê miqedes vedigeriya welatê xwe, dilê wî bi hirmet û beyraniyeta Selahedîn hiltavêt.

Selahedîn xizmeta islamiyetê kir, qralên Ewropayê şkênandin. Ereb pê serevraz bûn. Sergevazê kurd bû malê ereban, siltanekî erew.

Di dasitana Selahedîn de tu şopên kurdîtiyê ne diyar in, ji navê kelehekê pêve. Di çiyayên elewiyan de kelehek heye, navê kurdan lê ye. Ereb jê re Hisnel-Erad dibêjin: Keleha kurdan.' Şerevaniyên kurd şûrkêrên xaçê jê derêxisti bûn û ew bi xwe tê de asê bû bûn. Heta hingê navê kelehê « krak dê şevalyê » yanî keleha şevalyan bû.

∴

Gava segman Wilyem gotina xwe gihande dawiyê, axa û serbendê wî Roger Pîkon jê pirsî:

— Ji tiştê ko tu dibêjî ewle yî?

Wilyem bi edeb, xwe li ber Pîkon xwar kir û got-ê: Belê ezbenî

Pîkon bihinekê sekinî, xwe ker kir û paşê serê xwe hilda û gote Wilyem:

— Tu dibêjî ko te xweha min nas kiriye, ma gelo ewê jî tu nas kirî?

— Çawan ez nas ne kirin ezbenî, me ew rojên şêrîn anîne bîra xwe. Rojên ko li Skoçlandê di qesira bavê serbend de; min xizmeta we dikir.

— Jê pê ve, çi gote te?

— Biserhatiya xwe, çawan hêsîr bûye û îro di çi ezabî de ye

Divêt em wê xelas bikin, hetanî ko xweha min di hêsîriyê de ye bila ji min re her xweşî û rahetî heram bit.

— Belê ezbenî emê wê xelas bikin; divêt em wê xelas bikin...

— Îşev ezê meselê berpeyi qralê xwe Riçardê Şêrdil bikim, ka ray û tevdîra wî çi ye?

Pîkon di oda xwe de wek şêrekî birîndar diçû wî serî û dihate vî serî.

Pîkon ji xweha xwe Mariyê ecêb hez dikir. Roja ko qralê Ingilistanê niyeta seferê kiri bû û herê xwe da bû erdê miqedes Pîkon jî keti bû ordiwa wî. Xweha wî Mariyê ne dixwest brangê xwe bi tenê bihîle, rabû ew jî pê re hat.

∴

Selahedîn di Teberiyê de ordiwa ehlên xaçê şkênandi bû, keti bû Qudsa şerîf, Misir û Sûriye bi şûn de vegerandi bû. Selîbî ji hev de keti bûn.

Xebera şikestina selîbiyan gihaşte welatên Ewropayê. Xelkê Ewropayê bi hev ketin. Jamên dêran lêdidan, li def û tepilkan dixistin û bangêran xelk diezimandin cibada xaçê. Reqetên mêran, pîr û ciwan, ber bi qerargahan ve diherikin. Ji qralên Ewropayê sê mîran pardariya vê seferê dikirin: Barbarûsê elemanî,

Filip Ogûstê frensizi û Riçardê ingilizi ê şêrdil. Ordûke bêqeder boş û mezin, bi terş û dewar û bi her hacetên cengê keti bû vaporan û berê xwe da bû erdê miqedes.

Ji tarixa Îsa 1189 û ji tarixa Mihemed 585 sal bi şûn de ma bûn.

Qranê elemani bi rê ve keti bû behirê û tê de emirê Xwedê kiri bû. Stola selibiyan gihaşti bû pêşberê keleha Ekayê. Selibiyan bi ser kelehê de girt û piştî şereki no ketin ê. Di vi şeri de Pikon birindar bû. Rimek di polê wi ê çepê re derbas bû bû. Pikon biri bûn xestexanê. Siwarên ola Mihemed gava ji kelehê kişiyan hêsir bi xwe re biri bûn. Di nav wan de xweha Pikon, Mari ji hebû.

Ji miladа Îsa pêxemher heta hingê 1191 sal keti bûn navê.

Navê Mariyê kirin Sireya. Mari di qesira Selahedin de digel cêri û nedimên wi radibû û rûdinişt. Selahedin piştî ko li çiroka keçikê serwext bû qewiti li peyayên xwe kir ko qedirê wê bizanin û wê nerencinin.

Lê keçika reben wek mêkewa di rikehê de girti, di nav caxan re temaşa dinya azahiyê dikir. Deştên ko ji ber hev dikişiyan û digihaştin qûntarên çiyê, rêlên ko di pal û pesaran re dikişiyan û bi ser pehnavan de diketin; keriyên xezalan yên ko ji ber siwar û tajiyan direvin û xwe didan qelaçan...

Di vê navê de xulamê Pikon, segman Wilyem bi nameke Riçardê şêrdil çû bû ba Selahedin. Xulamê sadiq kir ne kir û bi dari xweha axayê xwe ket. Mariyê jê re biserhatiya xwe got. Wilyem li tevdirekê geriya ko Mari an Sireyayê birevine. Lê jê re tu imkan ne hate ditin. Pasbanên qesirê çivikek ne dihiştin ko bêi wan bifire û bikeve derveyi qesirê.

Wilyem her tişt ji Pikon re goti bû. Pikon qesta qralê xwe kir û mesela xweha xwe jê re da zanin. Riçard wad da ê ko ji xelasa xweha wi re wê bixebite û gote wi:

— Pikon, divêt tu bizani ko Selahedin mêreki qenc, alicenab xudan bext û rûmet û bi rebenan re dilovan e. Ma naye bira te roja ko di dora Yafayê de siwarên me li selefên mir Sêvdin qelibi bûn û hespê min di bin min de hati bû kuştin, kurê Selahedin çi bi min kir. Belê gava ez ji hespê xwe ketim ne ajote ser min; êrişa siwarên xwe sekinand û du hespê kihêl ji min re rêkirin û hetani ko ez li hespi siwar ne bûm dirêji min ne kir. Û gava ez li hespê xwe siwar bûm dora xar û tiradê ji min re hişt. Pikon neyarên me mêrine qenc û xudan bext in; ji rêzika şerevaniyê der tu tişti nakin. Bila dilê te li gotinên min rûnit. Ezê ji Selahedin re binivisinim û tiwê bibini ko ewê xweba te azad bikit û wê vegerinit te.

Pikon çû destên qralê xwe û got ê:

— Ezbeni, hêviya min ji ev e. Ji xwe carekê Selahedin di civata mirekên erehan de ne goti bû; heya niho tukesi li ereban wek Ûsifê Selahedin bi edil û kerem hikim ne kiriye. Riçard rabû û ev name ji Selahedin re nivisand:

Tacidara!

Hilgirtiyê nameya min eskerek ji eskerên min ên qehreman e. Ev qehremanê ha çend caran di meydana şeref û rûmetê de xwe gihandiye qehremanên te û şûrê xwe hingaftiye berçeq û kewkebên siwarên te. Xweha wi ketiye destên siwarên te û iro hêsira te ye. Navê wê Mari bû, we navê Sireyayê lê kiriye. Qralê Ingilistanê ji hikimdarê misilmanan hêvi dike ko wê azad bike û vegerine brayê wê. Heke hikimdarê misilmanan pê qail ne bû, hingê bila brayê wê ji hêsir bigire û li cem xwe bihile. Tiştê ko Xwedê gihandiye hev ji hev meke û tu teyri ji hêlina wi bi dûr meêxe.

Ezê li hêviya qerar û bersiva te bimînim. Bi tenê beriya qedandinê dixwazin binim bira mirê misilmanan ko Emer kurê Xetab gotiye: « We kengê xelk bêsir kirine; xelkê ko ji diyên xwe aza hatine dinyayê ».

⁂

Roger Pikon li hespê xwe siwar bû û wek bayeki kur qesda merkeza Selahedin û hepisxana xweha xwe kir. Xulam û berdevkan ew birin hafa serdarê kurd, siltanê erew. Selahedin piştî ko name xwend keni; Pikon rûniştand û jê re got:

— Xortê qenc, ezê bi bicihanina daxwaza qralê te gelek kêfxweş bibim. Li min gelek

JI DÎWANA CERGERXWÎN

## SILAV LI SIFRA HAZIR E

Ey sûxteyê bê nav û deng Dijmin li ser belafir e
Pir leşker û top û tifeng Seyda ew e ê mabir e
Sed sal in ev Zeyd û Emir Ceng e digel rişa melê
Mertal di dest wanda bihuşt Gurzê di dest wan agir e
Şêxê bi tac û teylesan Wergirtiye rengê Xidir
Rûniştiye l'Birca-belek Şahê ecem şah Nadir e
Ew sofiyê dil û reben Serqot û xas û tazi ye
Digiri bi hewar û fixan Şêxê min Evdilqadir e
Carek li şêx ew nanire Da zani be rast û derew
Kincê li şêx çox û qumaş Kincê li sofi çadir e
Axa bi deh gundê xwe ve Bawer dike Keyxusrew e
Talanker û diz û keleş Wi daye ser rêça gur e.
Halê me kurmancan ev e Em dê çilo serbest bijin
Herçi ko çûye guh medê Silav li sifra hazir e
Seydayê rast û rihni ye Lewra Cegerxûn namidar
Zana dizanin ew ki ye Yên ker dibêjin kafir e.

CEGERXWÎN

# WARÊ

## MIN NE Î KOR E

Di Kurdistana roava û wilayeta Meletiyê da eşîra Bêzikan heye. Nivê vê eşîrê yê pirtir li nivroyê Ferêt di wilayeta Rihayê da dimîne ko jê ra Bêzikê Omaxacê dibêjin. Ji ber ko Ferêt ev eşîr kiriye du cihan, malmezinên her du cihan cida ne. Pir caran neyarî ji dî navbera van malmezinan da çêdibe.

Mala Ûsiv axa ji malmezinên Bêzikê jorîn û mala mêrxasên eşîrê ne. Vê paşiyê di vê malbatê da bi navê Ĥemê Qadir axa mêrek rabû bû ko di wî welatî da rû bi mêran va ne hişti bû. Bavê Ĥemê, Qadir axa sê kur hebûn, Hemê, Emer û Mistefa.

Birayê biçûk Mistefa him delaliyê bav û biran û him ji bi desthilanîna xwe ji Ĥemê ne kêmtir bû.

Rojekê Mistefa ji bo derbazbûna Ferêt diçe ser gemiyê û li wir raste Seyid Weqas tê, ko ew jî ji malmezinên Bêzikê Omaxacê ye.

Ji ber ko di berê da neyariyeke biçûk di navbera van her du malbatan da hebû, li ser gemiyê zû li hev radibin û her du bi şeşaran bera qefsinga hev didin. Berikên Seyid Weqês pêsîra Mistefa dihingêvin û bê can dikeve erdê. Seyid Weqas jî, berî ko gazî bi ser gihê li Ferêt derbas dibe û diçe mala xwe.

Qadir axa ji tê cendekê kurê xwe dibe mal û ji her alî dost û nasên wan berê xwe didin Semsatê, mala Qadir axa ji bo serxweşiyê.

Lê çiqas ko Seyid Weqasê çû bû mal jî ji tirsa Hemê xew ne ketî bû çavan û ji mala xwe jî baz da bû. Mêraniya Hemê ewçend deng da bû ko Seyid Weqas reya revê jî şaş kirî bû. Piştî çar rojon Seyid Weqas ji xwe bê hêvî bû û berê xwe da mala Qadir axa û dexaletê.

Çaxê nivro bû, dema taştiya mêvanan; Qadir axa li odê hêreyî danîna sifrê û Hemê jî li metbexê çavdariya rakirina firaqan dikirin. Di wê gavê da bû ko Seyid Weqas li pêş mala Qadir axa xewinî. Kesek bi xwe ra ne anî bû, ko ev şareta xweavetinê bû.

Xulaman li hêla odê xeber da bûn Qadir axa û li hêla malê haya Hemê kirî bûn.

Li ser vê yeka ko ne dihat bîra kesî bavê bi kur ve xwe ne tertîlandin û her yekî qesda yê din kir. Qadir axa di dilê xwe da digot, Ĥemo î serhişk e, heye ko gotinine sar bide rûyê Seyid Weqas, an tiştinê lêde. Ĥemo jî dizanî ko Qadir axa bi mihrîvaniya bavîtiyê dexaleta xwîniyê kurê xwe qebûl neke û bi wê yekê navê camerî û dilgirsiyê li ser mala Ûsiv axa rake.

Di navbera qesra odê û malê da kur û bav raste hev hatin. Ji devê herduyan bi hev ra ev gotin bi derket:

— Ev e Seyid Weqas têye û xwe davêje mala me. Divê em tê biborin.

Piştî ko her yekî fikra ê din nasî, Qadir axa yê ko heya wê hingê hêstirek bi çavan ne ketî bû, du hêstiran di nav bijangan ra da der. Dema Ĥemê hêstir: li çavên bavê xwe dîtin, got:

— Bavo! ma evçend ji te ra giran e ko tu di xwîna kurekî xwe biborî?!.. Ma ji bo vê digirî?!....

Qadir axa bi dilê xwe ê xurt li Ĥemo vegerand û got:

— Na Hemo, di borîna xwîna kurekî ji min ra ne ewçend dijwar e. Lê gava min tu li ser vê reya camêr dîtî ji kêfxweşiyan ev hêstir bi çavên min ketin. Sebebê kêfxweşiya min ev e ko, min zaniye warê min ne îkor e..

OSMAN SEBRÎ

---

xweş e ko ev name bi destê şerevanikî qralê Ingilistanê gihaştiye min. Ez bi silavine esker silavan li wî şerevaniyî dikim û jê re dibêjimî ko min ne adet e, ez daxwazên Riçardê şêrdil bi şûn de bavêjim. Heke dinyayê carekê Şêrdilek û Selahedinek afirandiye ev ne tu hêcet e ko careke din ji mêrine wek wan dê biafirîne.

Berdevkan Marî gihandi bû Pikon. Pikon xwe li destên Selahedîn xwar kir û ew ramisan. Hêstirên şahiyê ji çavên Pikon diherikîn Selahedîn ji Rûçard re nama jêrîn rêkir:

Tacidara!

Me xatirê qasidê te herwekî sezayî wî, sezayî her mêrê qenc e, girt û zanî. Qasidê te silavên min, silavên wî mirovê ko di qadên şer de qedir û hinera te zanî, ji te re digehîne.

Me ji ya ta ne kir û ew bi xweha wî re hêsîr ne girt. Ji ber ko di mal û qesirên me de bi tenê ji hêsîrên qadên şer re cih heye. Hêsîr bi tenê ew in ko di dema peveçûnê de ji ber bêgaviyê xwe tavêjin bextê dijminê xwe. Qasid mêvan in; mêvan jî nabin hêsîr.

Me xweh vegerande birê. Xwedê wan bi hev şa bike.

Selahedîn bi qewlê Emerê Xetab ve çû da ko Riçardos jî bikare ji ya pêxeberê xwe Îsa bike û erdên ko ji xwediyan standine vegerîne xwediyan. Ma Mesîh ne gotiye: « tiştên qeyser bidine qeyser; tiştên Xwedê bidine Xwedê ».

Dihok: 9 Îlon 1942 BIŞARÊ SEGMAN

# ŞÛŞA DILAN

« Yadê dil ketiye ray lê nabê »
« Şûşa dilan şikestiye cebar nabê »

— Vêna, tu bi serê xwe kî, bêje min tu ji min hez dikî?

— Çawan ez ji te hez nakim, ez perestişkara te me....

— Tu ji min re sond dixwî ko evîna te sadiq û abadîn e?

— Hezar sondî dixwim.

— Hingê ezê bi dilekî rahet û xatircem herim qada şer, û ezê bizanim û jê ewle bibim ko di pey min re yek heye, tu heyî, ko dilê wê bi min ve ye û ji min re diayê dike û hêvîdara Xudayê xwe ye ko ez mizefer bibim û vegerim bêm û xwe bavêjim himbêza wê...

Lokûs ev tişt gotin û Vêna kişande hîmbêza xwe û ew li ser eniya wê maç kir û vegeriya qerargahê.

Nîv saêt kete navê. Di xewgeha Vênayê de, xortekî din, wek Lokûs rift û bilind, ji piyan disekinî û pê re taxaft.

— Vêna, tu bi serê xwe kî, bêje min, tu ji min hez dikî?

— Çawan ez ji te hez nakim, ez perestişkara te me.

— Tu ji min re sond dixwî ko evîna te sadiq û abadîn e?

— Hezar sondî dixwim....

— Hingê ezê bi dilekî rahet û xatircem herim qada şer û ezê bizanim û jê ewle bibim ko di pey min re yek heye, tu heyî, ko dilê wê bi min ve ye û ji min re diayê dike û hêvîdara Xudayê xwe ye ko ez mizefer bibim, vegerim bêm û xwe bavêjim, himbêza wê...

Lagos ev tişt gotin û Vêna kişande himbêza xwe û ew li ser eniya wê maç kir û vegeriya qerargahê.

***

Ma ew çi xilqeteke ecêb bû ko ji du mêran hez dikir û ji her diwan re digot ez ji te hez dikim...

Me got ecêb, lê heke mirov da eqilê xwe dibîne ko tê de tu ecêb nîne. Gelek jin hatine dîtin ko ji du zilaman pev re hez kirine; gotine ko ji wan hez dikin.

Lê herçî Vênayê, ewê digot ko ji wan her du xortan hez dikir û ji dil û bi rastî dil, an dilên xwe da bû wan û di riya wan de amadeyî her fedakariyê bû. Ev ecêb bû. Lê jê ecêbtir, wan her du xortan jî pê dizanî û pê qail dibûn û ji hev ne didexisîn. Belê van xortan soz da bû hev û goti bû: « Emê heta dawiyê li hêviyê bimînin. Bivê nevê Vêna rojekê yekî ji me ewê di ser ê din re bigirit. Hingê yê ko Vênayê bijartiye ewê li nik bimîne û ê din divêt terka welêt bidit ».

Di qesira Klêopatrayê, di wê hêlîna evînê de halê Lokûsê romanî û yê Lagosê yewnanî bi vî karî bû û her du ji halên xwe razî bûn û xwe bextiyar dihesibandin. Herçî Vênayê, carina xwe seh dikir û tucaran di dilê xwe de bi du evînan ne dihesiya û ji xwe re digot; di her dilekî de evînek.

Ma ev Vêna, xwediya wê evîna hevalcêw kî bû, ji kû hati bû û çawan keti bû qesira melîka Misirê?

Tukesî pê ne dizanî, ji yekî pêve. Lê ew jî ji nişkekêvê emirê Xwedê kir û boriya Vênayê di tariya nenasiyê de winda bû. Ew mirov ji nişkekê ve mirî bû û di qesirê de goti bûn jehir pê dan e. Hinan jî digot, ya ko jehir da ê Vêna ye. Vênayê dixwest ji dîdevaniya wî xelas bibe.

Navê mêrik Emro bû. Emro ereb bû. Emro piştî ko qeyser Jûliyûs Sezarûs keti bû Skenderiyê, hati bû Misirê û Vêna jî bi xwe re anî bû.

Vêna, hingê deh salî bû. Klêopatrê ew dît û ecibandi bû û ew ji xwe re kiri bû nedîme. Nedîmeyên din jê didexisîn û di nav hev de digotin: « Ev keçik xweha melîkê ye. Betlamyos hej jinikeke ereb dikir. Vêna jê peyda bûye. Betlamyos jinika ereb kuşt û keçik bi mirovekî xwe re şande derveyî Misirê û qewîtî lê kir ko beriya mirina wî keçik venagerit Misirê. Mêrik keçik bir û çû. Piştî deh salan Betlamyos mir. Klêopatre bû melîka Misirê. Peyayê Betlamyos, Emro, digel keçikê yanî Vênayê vegeriya Misirê ».

Ev kurt û pist bi guhên melîkê ve jî bûn. Klêopatre gelek enirî û li nedîmeyên xwe hate xezebê, ew ceza kirin û ji rikê wan ve qedirê Vênayê hêj çêtir girt. Klêopatre ji milê din rabû Vêna ji yar û mêrê xwe Mark Antonyo re da nas kirin û jê re got ko Vêna keça fermandarekî bavê wê ye. Di qesirê de piştî Klêopatrayê Vêna xudan gotin bû.

Vêna mexlûqeke xerîb bû. Di wê de du can û giyanên bervajiyên hev dijîn, yek ji ê din cida û yek ji ê din veşartî û jê re nenas. Vêna di yek wextî de digirî û dikenî. Lê di Vênayê de ji her tiştî xerîbtir evîna wê bû. Ma çawan dibû ko di yek wextî de ji Lokûsê romanî û ji Lagosê yewnanî hez dikir; hezkirineke kûr û rastîn. Vênayê carina guh dida dilê xwe û didît ko ji her diwan weke hev

hez dikir û ne dikarî yekî di ser ê din re bigire.

Klêopatrê, wê canbaza evînê bi halê Vênayê dizanî û şîret lê dikirin û digot:

— Vênaî pîpoka dilê xwe bi du evînan meêşîne. Evînek dilê keçikan bi xwedî dike. Lê ji yekê bêtir wî diperitîne û wî rêvin û bêkêr dike. Dil nema bi xweşiya evînê dihese.

Vêna dida eqilê xwe; gotinên melikê rast didîtin. Lê dilê wê jê re digot ko di wî de evîneke bi tenê heye.

⁂

Lokûs û Lagos piştî ko ji Vênayê xatir xwestin vegeriya bûn qerargahên xwe û bi eskerên xwe ve berê xwe da bûn qadên şer.

Vêna xwe di ibadetgaha xwe de bi tenê kiri bû û ji her du aşiqên xwe re dia dikir. Ji Yezdan lavelav dikir û digot: Min ew sipartine te, tu wan bisitirîne.

Sê hefte ketin navê; qasidek ji qada şer hat û da zanîn ko dijmin şikestiye û ordiwa Misirê a mizefer daye pey. Lê dîsa wî qasidî da bû zanîn ko di navbera dijmin û misriyan de şerine no çêbûne û kuştiyên misriyan zehf bûn û serbend Lokûs jî di nav kuştiyan de bû.

Wek herkesî Vêna jî bi mirina Lokûs hesiya. Xencereke Vênayê hebû. Ew piştxencereke zêrhelî û diyariya Klêopatrayê bû. Vênayê herwekî tiştekî adetî bikira, bêî ko destên wê bilerizin û gonê wê biguhêre xencer ji kalan kişand û ew di sînga xwe rakir.

Vênayê xencer di aliyê çepê rakiri bû û şilfa xencerê hingaftî bû nîvê dilê wê. Xwîna sor di sînga wê a spî re diviziqî û di ser raxera xewgeha wê re diherikî. Vêna devbiken ji piyan disekinî û temaşa xwîna xwe a sor û germ dikir.

Cêrî û xulam pê hesiyan; deng bi qesirê ket. Xelkê qesirê di dora wê de li hev gihane hev. Kahîn û bijîşk Vêna li ser textê wê dirêj kirin û ew seh kirin. Dilê wê nema hiltavêt. Lê Vêna dijî û bi xelkê dora xwe re dida û distand. Xelk lê ecêbmayî man. Ma çawan dibû, bêî ko dilê wê hilavêje dijî. Hin jê tirsiyan; digotin: Vêna an yekcar rehmanî ye, perçekî yezdanî ye, an yekcar şeytanî ye. Kurt û pistan ji nû ve dest pê dikir, ma ev keçika xerîbxilqet ji kû hatî bû? ji însan an ji cinan daketi bû? Tukesî pê ne dizanî.

⁂

Çend hefteyên din ketine navê, Devê birîna Vênayê hatî bû hev, lê teptepa dilê wê nema vegeriya bû. Vêna gava di xew re diçû xelk bi tirs û hêdika nîzingî wê dibûn, guhên xwe didan milê sînga wê a çepê. Vêna bihîna xwe dida û distand, lê dilê wê nema hiltavêt. Xelkê terka wê didan; bi tirs û lerz diçûn ibadetgahê, dia dikirin û digotin: Xwedêo me jê bisitirîne...

Lagos di qadeke din de şer dikir. Qasidê wê qadê jî hat. Ordiwa Misirê zora dijminan biri bû. Lê Lagos bi birîneke xedar birîndar bû bû û bi rê ve emirê Xwedê kiri bû.

Vêna gava pê hesiya, bêî tu teredidê rahişte xencera xwe û ew di sînga xwe rakir. Lê vê carê ne di aliyê çepê lê di aliyê rastê re. Di sînga wê re dîsan xwîna sor viziqî, lê vê carê Vênayê nema kari bû ji piyan bisekine; ket erdê û beriya ko kahîn û bijîşk bêne ser, Vênayê çavên xwe ji ronabiya dinyayê re girti bû, dilê wê hew hiltavêt û bihîna wê li ber wê çikiya bû. Vêna miri bû.

Klêpoatre gelek li ber ket; şîna wê da girêdan û di ber dara şîna wê re ji çavên xwe du hêstirên germ herikandin.

Klêopatrê dixwest jê yadigarekê hilîne. Emirî bijîşkan kir ko dilê Vênayê derînin û jê re bînin. Bijîşkan sînga Vênayê kelaşt. Tê de çi bibînin, li şûna dilekî du dil, yek li aliyê çepê, yek li aliyê rastê. Hingê herkesî zanî çawan Vênayê, cihê cihê ji du mirovan hez dikir. Vênayê di her dilekî xwe de evîneke din bi xwedî dikir. Bijîşkan dilên Vênayê kirinê şûşekê de û berpeyî Klêopatrayê kirin. Klêopatrayê ew şûşe danî ibadetxana xwe.

⁂

Evîna Klêopatrayê vemirî bû. Antonyo, mêr û aşiqê wê, xwe kuştî bû. Klêoparayê mar berda bû ser xwe. Oktavyoyê mizefer Misir vegirtî bû.

Oktavyo gava qesira Klêopatrayê seh dikir di ibadetxanê de sûşa her du dilên Vênayê tê de peyda kir. Kahîn û bijîşkan jê re got:

— Ev her du dil di sîngekê, di sînga Vêna delal de hiltavêtin. Vênayê bi yekî hejî Lokûsê romanî û bi ê din hejî Lagosê yewnanî dikir. Vêna di yek wextî de bi yekî dikenî û bi ê din digirî...

Kahînan çîroka Vênayê ji Oktavyo re dûr û dirêj qise kir. Oktavyo deng ne kir, lê heye ko li ber xwe ket û bi xemxwarî emirê ko di heqê Klêopatrayê de da bû anî bîra xwe [1].

Serdarê mizefer, piştî ko biserhatiya Vênayê seh kir şûşa dilan ji ibadetxana Klêopatrayê rakir û ew şande Romayê.

Tarîx jî ... ji mîlada Îsa pêxember re hêj sih sal diviya bûn.

Dihok: 29 Îlon 1942 BIŞARÊ SEGMAN

[1] Di hejmara Hawarê a 50î de çîroka Klêopatrayê bixwînin û li biserhatiya Klêopatrayê serwext bibin.

# MEMOZÎNA EHMEDÊ XANÎ

— 8 —

MEBDEÎ MEQAL E DI NE'TA HAKIMÊ BIHTAN XUDAN IQBAL EMÎR ZEYNEDÎN IBINI EMÎR EVDAL DIGEL WESFA HER DU HEMŞÎREYÊN DI WÎ DI SAHIB CEMAL ZÎN Û SITÎ DI BÊ MISAL

Neq-qaşi sehîfeyî hikayet
Neq-qadi sebîkeyî riwayet
Kêşa bi vî terhî resm û ayîn
Lê da bi vî terzî derb û tezyîn
Go padîşahek zemani sabiq
Rabû di bikûmeta xwe faîq
Ecnasi milel miti' û minqad
Nesla wî ereb emîri ekrad [1]
Texti wî Cizîr û bexti mes'ûd
Tali' qewî meqami mehmûd
Rûm û ereb û ecem diferman
Meşhûr bi navê mîrê Bihtan
Aba' û izam û ced-di walid
Mensûb û miselseli di Xalid [2]
Ceb-bari felek ji wî hezerkar
Meslûl ji sel-li seyfi ceb-bar
Zînetdehi milk û zîni dîn bû
Navê wî emîr « Zîndîn » bû
Mîrî ji wî ra bi zîn miwes-sef
Zînet ji wî ra bi dîn mi'er-ref
Asarî şecaeta wî şahî
Dagirte ji mah heta bi mahî
Mahiyet-ti wî medari dinya
Şahiy-yeti wî şi'ari iqba
Mihtaci sexaweta wî Hatem
Mexlûbi şecaeta wî Ristem
Hatem ji kemali himmeta wî
Tomarî sexaweta xwe girtî
Eql û hiner û sexa û meydan
Zebt û neseq û nizam û dîwan
Dîndarî û dewlet û diyanet
Serdarî û sewlet û siyanet
Meşbûn ji heryekî xezînek
Meknûn ji heryekî defînek
Bê isir ji bo wî ra miyes-ser
Bê xusir ji bo wî ra miqed-der
Enwa'i newadir û cewahir
Elwani nefais û zewahir
Mecmûeyi mimkinati meqsûd
Wacib kiri bûn li nik wî mewcûd
Hasil bi wî mid-dea û metlûb
Wasil bi wî mişteha û mehbûb
Sehna keremê ji nazenînan
Cen-net tijî bû ji hûr û eynan
Hûrê wî di cen-netê gelek bûn
Xulmani wî di hezretê melek bûn
Lê zadeyi dûdimani dewlet
Newbaweyi bositani if-fet
Şehzade du bûn li nik wî şahî
Xurşîd du bûn li nik wî mahî
Yanî ko ji wî nejadi alî
Hemşire du bûn di laibalî
Yek serwi riyazi raaitî bû
Wê nav bi rasitî Sitî bû
Ya di ji dil û hinavi mîr bû
Wê nav ji nisfînavi mîr bû
Rawî wihe gote min miem-ma
Ew hûr bi navê Zîn misem-ma
Yek zêde şirîn ziyade mehbûb
Yek rûhi qilûb û hûr û meqlûb
Yek esmer û ya diwî zerî bû
Yek hûrî û ya diwî perî bû
Ew hûr û perî di bêbedel bûn
Lewra ko ji nûri lemyezel bûn
Hisna ruxi wan kesî ne dî bû
Zîra ji cemali sermedî bû
Leb le'l û semen izar û gulrux
Rewneqşikenî bitani xul-lux
Zilfeyn misali tayi sinbil
Xed-deyn ji rengi rûyê sorgul
Ew sorgul û sinbilê di azad
Bişkiftî li qed-di serw û şimşad
Sorgul ji xwe da li ser rehiştî.
Sinbil bi xwe pêk ve daheristî
Hisna xeti rux ji xet-ti yaqût
Çaha zeqenê ji sihri harût
Goya kiri bû ji mişk bêzî
Rem-mali felek niqatrîzî
Xal û niqet û beyaz û hemre
Beyt û hecer û tewaf û emre
Ebrû ji kemani qewsi eflak
Mijgan bi keman ji sehmi sem-mak
Sermayei wehşeta cinûnan
Mermûz di dehşeta iyûnan
Mebhût dibûn di terfetel-'eyn
Keş-şafî rimûz hikmetel-'eyn
Cebbet dinima ji terfi eklîl
Goya ko li ifq cenabi cebrîl
Wistay li istiwayê daîm
Xurşîd di xidmeta wî qaîm
Herçî bidiya rex û binagûş
Filhal bi der dida ji bo hûş
Gerden te digo di desti saqî
Qarûre ye pur şerabi baqî
Yan şibheti şîşeya nebatê
Yan menbei kehniya heyatê
Serpençe û naxuni mihen-na
Rencendeî xatiri miten-na
Xelkê ko didîtin ew kemergah
Hazir dikirin ji xewri dil ah
Zahir dikirin ko zend û bazin
Êdî ne diman gilî û gazin
Herçend ko her du şibhi can bûn
Ew her du bi hisin tew'emran bûn
Herçend Sitî we nazenîn bû
Lê Zîn ji misali hûri eyn bû
Herçend Sitî sitareweş bû
Lê Zîn bi ruxan bêvegeş bû
Herçend Sitî wekî qemer bû
Zîn mihir-sifet ziyade ter bû
Ev herdû wekî dû şebçiraxan
Gava dimeşîne baxî û raxan
Nalan dikirin cemad û heywan
Talan dikirin nebat û insan
Kofî ji cewahiran mikel-lel
Koter ji nitrikan miselsel
Ev zînet û xeml û qişt û benbel
Ez piş û pes û yemîn û qenbel
Gava dimeşîn perî digel wan
Walib dikirin welê dixelwan
Ger şêx in û ger mela û mîr in
Derwêş û xenî û ger feqîr in
Kes nîne ne talibi cemalê
Kes nîne ne raxibi wisalê
Hin raxibi hisni layezal in
Hin talibi qalibê betal in
Lîken hemiyan yek e yeqîn dost
Ferqa ko heye ji mexz ta post.

## NOT

[1,2] Seyda, gava em seyda dibêjin bêî ko bi nav bikin jê mexsed seydayê kurdmanciyê, Seyda Mihemed Hemze, midîrê dibistanên Hesîçê ye.

Seyda Memozîn li Stenbolê da bû çap kirin. Di wê çapê de li ber van her du malikan hejmarên notan hene lê not bi xwe nînin.

Vê paşiyê Seyda hati bû Şamê. Min ev tişt jê pirsî û ewî jî gote min: « Min hingê not jî danî bûn û tê de goti bû ko li gora nivîşteke din ev her du malik bi awayê jêrîn in:

1 — Ecnasi milel mitî û minqad
Kurdê kurê kurd emîrê ekrad
2 — Aba' û izam û ced-di purnam
Mensûb û miselseli di Behram.

Lê xwediyê çapxanê yê ko bi kurdmancî nizanî bû pê qail ne bû û gote min: tiştê ko di minhoyê de nîne ez nikarim çap bikim ».

Herwekî nas e yê ko esilên mîrekên Kurdistanê gihandine ereban xwediyê Şerefnamê, Şerefxanê bidlîsî ye. Ma mîr Şeref çire holê kiriye û ji mîrekên Kurdistanê heryekî re, li gora kêfa xwe, pêşîkî ereb peyda kiriye?

Tiştê ko berî pêşîn têtê bîrê ev e: Hingê ev tişt baw bû û şerafet bi aliyê ereban ve didan. Ji lewre Şerefxan jî ji bona ko mîrên Kurdistanê ji şerafetê mehrûm nebin esilên wan gihandine ereban.

Lê bawar kirin ne welê ye. Ji ber ko mirov berî herkesî qencî û şerafetê ji xwe re dixweze. Şerefxan holê ne kir, malbata xwe ji vê şerafetê mehrûm kir û esilê mîrekên Bidlîsê, pêşiyên Şerefxan, ji erebîtiye prastiye û ew gihandiye Nûşîrewanê xwerû arî û iranî. Xwedê gunehên mîr Şeref bixefirîne.

Çîroka Şerfxanê bidlîsî kevin e. Lê vê paşiyê kitêbeke kurdî û frensizî derket, kilêbeke hêja. Xwediyê wê kitêbê jî tiştine kurdan bi aliyê ereban ve dide û ji bona bajarê Cizîrê, Çizîra Botan, Çizîra Mîr Şeref « Cezîret ibnil Emer » ya ereban dibêje. Ma ji Cizîrê xwerûtir bajarê kurdan heye.

Mîr Şeref berî sê sed û hin salan mîrekên me dikirin ereb. Îro kurdîzanekî frensiz — kurdîzanekî welê ko ji ber kurdparêziya wî welatiyên wî jê re dibêjin kurd — bajarên kurdan pêşkêşî ereban dike. Bextreşo miletê kurd....

# BINGEHÊN

## GRAMÊRA KURDMANCÎ

— 20 —

133 — Gava çend navdêr didin pey hev, herwekî mirov dikare her navdêrê bi rengdêra xwe a işarkî şanî bide, li gora zayend û mêjerê navdêran, dikare bi yek rengdêra işarkî jî bes bike. [1]

Navdêrên ko dane pey hev ne ji yek zayendî, lê ji yek mêjerî ne û her du jî yekejmar in. Rengdêra işarkî ji zayendê navdêra paşîn e û bi tenê navdêra paşîn tête tewandin.
Vê tîrê û vî kevanî bide min.
an: Vî tîr û kevanî bide min.
Tu vî hespî û vê mehînê dibînî?
an: Tu vê hesp û mehînê dibînî?
Tu vê mihê û vî beranî dibînî?
an: Tu vî mih û beranî dibînî?

Navdêrên ko dane pey hev ne ji yek mêjerî ne. Her navdêr bi rengdêra xwe tête nişan kirin û yek nikare bikeve cihê a din û li şûna wê rabe.
Tu vî hespî û van mehînan dibînî?
Tu vê mihê û van beranan dibînî?

### RENGDÊRÊN JMARÎN

134 Remgdêrên jmarîn ji hin jmarnavan pêve ne tutişt in û gava bi navdêran ve dibin an mêjer û mixdar an rêza wan didin zanîn. Ji vî awirî ve ev rengdêrên hu du celeb in: jmarîn û rêzîn.

135 — Ên jmarîn dikevin pêşiya navdêran û mêjer an mixdarê wan didin zanîn û navdêrên xwe li gora tewangên xwe didin tewandin: Deh mirov hatin. Deh mirovan got. Çel mirov hatin. Çel mirovî got. Çel û pênc mirov hatin. Çel û pênc mirovan got. Min deh rîtil goşt kirîn. Ezê deh rîtil goşt bikirim. Ezê deh rîtilan bikirim. Ezê çel rîtilî bikirim. Ezê deh rîtil û nîv pirtiqal bikirim. Ezê deh rîtil û nîvan bikirim. Ezê deh û nîvan bikirim. Tu ji vî sed xaniyî kîjanî diêcibînî?

136 — Ên rêzîn dikevin paşiya navdêran û rêza wan di qisetê de didin zanîn. Ev rengdêrên ko wek ên wesfîn didin pey navdêran gava navdêrên wan ji qisetê dikevin veqetandekên wan li şûnê radibin: Ji hire heta stûna çaran bijmêrîne û li ber wê bisekine. Ev e şagirtê çaran, ê heftan li kû ye? Mehîna min di bezê de a pêncan derket. Di vê rêzê de siwarê sisiyan birayê min, ê şeşan pismamê

[1] Kerem bikin fedkirin mada 58an.

# MEZIN Û MEZINATÎ AN SERGEVAZ Û SERGEVAZÎ

Ez vê bendê ji xanîma gelparêz Rewşen Bedir-Xan re berpê dikim

Ez dibêjim belkî ne hewce ye ko em serpilkî bipirsin û bêjin: Ma gelo, mezin ji kê ra tête gotin û mezinatî çi ye?.. Çi kesê tu bixwazî vê pirsê jê bikî, an dilbihewesê mezinatiyê ye, an jî bûye teriya yekî ji wan. Her yek bi dîtina eqlê xwe mezinatiyê di hinan da û bi awakî dibîne. Bi zanîna hinekan, axayek, begek, paşayek, mîrek, wezîrek an padîşahek yek mezin in. Lê qesda me ji mezinatiyê ne ev celeb mezinatî; bi tenê sergevazî ye. Ji van her şeş birên ko me jimartî pêve gelek birên din jî hene ko doza mezinatiyê dikin û jê ra mezin jî têtê gotin; lê ne sergevaz. Sergevaz ew mirov in ko miletan divejînin û radikin, an di vê rê da şopine kûr û mezin dihêlin.

Herwekî dilbihewesên serkevaziyê jî pir in divê em pir û hindik li ser vî rûçikê han û wergirtiyên wî, ramanên xwe berpeyî xwendevanan bikin Di vî warî da me kurdan gotinek heye dibêjin: « mirovek bêjayî hezar mirovî ye; lê hezar mirov ne hêjayî mirovekî ye ». Herwekî ifrat ji min ra bûye sinçiyekî naveqet, di vê yekê da jî gelekî pêş da diçim û dibêjim: « mirovek hêjayî miletekî ye; lê miletek pir caran ne bêjayî mirovekî ye ». Têtê gotin ko: ev celeb mirov ji miletan radibin û ne milet ji van mirovan, têne pêl.. Ev gotin çiqas ko rast e jî tevî rastiya xwe dîsa gotina me ya jorîn pûç nake.

Sergevazî wek mezinatiyên mayî bi xebat min e. Min ev kitêb heta rûpelê wê ê bîst û çaran xwend.

ŞANEK — Jmarnavên « dido » û « sisê » gava dikevin pêşiya navdêrekê û dibin rengdêr ji « dido » kîta paşîn û ji « sisê » kîta pêşîn dikevin û ev her du jmarnav dibin « du » û « sê »

| | |
|---|---|
| Du mirov batin. | Du mirovan xwar. |
| Sê mirov batin. | Sê mirovan xwar. |

### RENGDÊRÊN PIRSIYARKÎ

137 — Hin pronavên pirsiyarkî gava dikevin pêşiya navdêran dibin rengdêr û ji wan re rengdêrên pirsiyarkî dibêjin. Ev rengdêr bi tenê di komekên pirsiyariyê de têne dîtin: Kîjan mirov hat? Tu kîjan mirovî dibînî? Kîjan jinikê got? Kîjan mirov hatin? Çend mirovan xwar? Tu çend mirovan dibînî? Ev çi tişt e? Tu çi tiştî dixwazî? Tu jî çi kesî yî? Tu çûyî kû derê?

û xwe westandinê nakeve dest tu kesan, hêrgiz bê wî mirovê ko ji ho wê yekê hatiye afirandin. Lê mezinatiya din bi west û xebatê dikeve destê wan kesan ko berî her tiştî xwe dibînin, xwe difikirin û ji bo xwe ne. Herçî sergevaz in, tenê û bi tenê armanca xwe diramin.

Mirov çiqas rûpelên dîrokê tev dide, sergevazên ko hatine, an li ser rakirina mileteki û an jî ji bo danîna ol û mezhebekê xebitîne. Hinekan ji wan karên xwe birine serî û hinekan jî temam kirina wî karî ji hevalên xwe ra hîştine. Bi çav pesnedarên wê rê, ev her du bir, ji hev nayêne veqetandin, ko hêjayî girisandinê ne (te'zîm). Ev mirovana dil û canên xwe bicarekê û bê hîle didin armanca xwe û bê wê armancê di dinê da li pêş çavên wan tu tişt naxewine. Havilên kirên wan ewçend mezin in ko mirov bê raman destê şîna Xwedê di nav da dibîne. Heke mirov ji wan ra peyayên Xwedê bêje, gotin geleki xweş di cihê xwe da tê. Di rûpelên dîrokê da biserhatiyên sergevazên ko me xwandî dadewer dibin zînatker dibin, bawermend dibin nebawermend dibin; kirên wan ji kirên Xwedê ne. Çima ko kirên wan, rê û rêzikên rûyê dinê ji awakî diguhêzin awakî din.

Rûçikên sergevaziyê jî, li ser bawerî, dema ko tê da radibin û cihê ko tê da dijîn, serpilkî ji hev cida dibin; lê di binatiyê da yek in. Bi çav zanîna min yên bingehî ev in.

1 — Bawarmendin: bi rastî û gîhana armanca xwe.

2 —Zana ne: di nasîna nefsiyeta xwe û heval û hemberên xwe da.

3 —Têgihêştî ne: di serwext bûna doraliyên xwe da hişiyar in.

4 — Xweyî vîn in: herçiya dixwazin bê dudilî dikin.

5 — Xweyî şîn in: ji bo kirina her tiştî qewtê di can û dilê xwe da dibîn in.

6 — Mêrxas in: reya tirsê tucar bi dilê wan nakeve.

7 — Zorbaz in: xurtiyê bi temamî di xwe da dibînin û xurtiyê li xurtan dikin.

8 — Dilovan in: li ser bindestan.

9 — Dil/eximin; tu boblat û lehî dilên wan nahejîn in.

10 — Dûrbîn in: ji dîtina çavan bêtir, bi dil û mêjûyên xwe agahên rastiyene.

11 — Hûrbîn in: mezin piçûk tutişt li ber bînahiya wan nayête veşartin.

12 — Çavekirî ne: naxapin û nayêne xapandin.

13 — Bire ne: di anînciha daxwazên xwe da zor şidiyayî ne.

14 — Rastin: di dilên wan yên girs da rêyên xar û çoleçiv nîn in.

Tête gotin ko ev rûçikên han bi pir kesan ra têne dîtin. Erê em nabêjin ko xelk hemî ji van rûçikên han bi carekê bê parin. Her yeki, hinek ji van, yanê dido, sisê, çar, pênc an şeş û heft li nik digehin hev û peyda dibin. Lê hemî bi hev ra, no. Çima ko gava ev rûçıkên me jinartî hemî di geda yeki da gihêştin hev û tikûz bûn, hemîn ew mirov dibe sergevaz.

Hemî sergevazên ko gelên ketî rakirine an ol û mezheb danîne ji van rûçikên han hemiyan ne bê par bûne. Lê ew jî giştik ne yek in. Hinekên wan xurt û jêhatî bûne, ko kirên gelek mezin an şopên kûr û fireh li pê xwe hîştin e. Ên mayî evqas der pêşda neçîn e.

Di vir da, ez camêrî an berpirsiyariya kêm û zêde bûna han davêjime ser gel an hevalên wan. Piştî ko ev hemî rûçikên me jinartî di sergevazeki da tikûz bûn, hindikiya havila kirên wî ji bêkêriya kesên dora wî ye.

Rabûna sergevazan: heye ko hinek bipirsin û bêjin; gelo sergevaz çawan û çi demê radibin?...

Bi çav min, sergevaz zaylyên dem û mehcetê ne. Çi gava dem û mehcet gihêştine hev, ji wan sergevazek têtê pê. Ev hewcebûn ewçend pêş de diçe ko, xelk ji xwe bê hevî dibe û çav dide destê şîna Xwedê. Yanê dixwazin ko Xwedê li nik xwe sazê wan bigerxe. Ev daxwaz ewqas pir dibe ko [ gotin neyê şermandin ] êdî guhên xelkê dirêj dibin Hînga, Xwedê peyakî xwe dajo pêş, ko hemî rûçikên sergevaziyê tê da tikûz in. Ew peya bê west û rawestîn dixebite û xwe dide nasîn. Dema xelk wî dinase, bi her awayî xwe dispêrinê. Ew jî wan berve felat, azalî û serdestiyê dajo.

*
* *

Qet tu caran ji bîra min bi dermakeve ko, em kurd jî hewce û çavnêrê sergevazekî ne. Çigava ew sergevaz ji me rabû, teqez ev rûpelên bextereşiya me dê bêne wergerandin û di dîroka jîna gelê kurd da wê rûpeline bextiyariyê bêne vekirin.

Ez dibêjim belbî ew roj ne gelekî dûr be. Pir mikûne ko sergevazê me yê pêşende li diyarê qada xehata welêt, li hêviya roja xwe rawesti he. Em kurd dibêjin: ( Kaniya ko tim av jê hatiye bi car namiçiqe ). Gelê kurd yê ko tê da sergevaz rabûne, ne dûr e ko di rojeke wekî iro da sergevazekî bizê.

OSMAN SEBRÎ

# REWŞA DINYAYÊ

**ŞERÊ MISIRÊ** — Ji 23ê Çiriya-Pêşîn ve di eniya Misirê de êrîş e, êrîşa ingilîz û hevalbendan e.

• Fermandariya ingilizî vê carê beriya ko dest bi êrîşê bike xwe bi temamî kar kiriye, her tevdir dîtine û bi her awayî serdestî, di bej û behir û hewan de, xistiye destên xwe. Jû pêve fermandariyê ji bo êrîşê wexteki gelek î minasib jî hijartiye. Ji alîkî bayê sehrayê honik bûye, ji aliyê din qewetên elemanî, nemaze ên hewayî di eniya ûris de mijûl in. Digel vê hindê heye ko ji qewetên mihwerê re ji welêt hin imdad û piştmêr hati bin. Ji ber ko ji 11ê Çiriya-Pêşîn û ji nû ve balafirên elemanî li maltayê dişidandin.

Di vê êrîşê de tektika, yanî awayê şer, ingilîzan ji tektikên şerên vê eniyê biferq e. Piştî ko ingilîz kişiya bûn xeta Qetara û Elemeynê bêpivaniya sehrayê ji ortê rabû bû. Ji lewre tang û herçî qewetên mêkanikî weke berê nikarî bûn tev bigerin, menaweran çêkin û bikevin paşiya xetên dijmin û lê wer bên.

Ji ber sebebên jorin fermandariya ingilizî vê carê bi eskerên piyade dest bi hicûmê kir. Li 23ê Çiriya-Pêşîn, şeva Înê, di tava heyvê de, topçiyên ingilîzî dest bi lêxistana xetên mihwerê kir. Balafiran ji pardariya vê bombaranê dikir. Qewetên mihwerê pêşiya xetên xwe bi zeviyên torpîl û leẍeman girti bûn. Ji piyadan re diviya bû van torpîl û leẍeman ji ber riya xwe rakin. Di vî işî de topçî û balafiran jî arîkariya piyadan dikir, wan ji bi gule û bombeyên xwe ew torpil û leẍem diteqandin. Welê dixwiye ko ji bona vê yekê balafirên ingilîzî û yên hevalbendan, carina di rojekê de, ji sed carî bêtir di ser xetên dijmin re difiriyan.

Heta 30ê Çiriya-pêşin şer bi vî awayî dom kir û piyadeyên britanî piştî bombaranên topçî û balafiran di hin deran de erd ji torpîl û leẍeman paqij kirin û berdan xetên dijmin. Nemaze di qada bakur de britaniyan xetên dijmin qul kirin û neqebine fireh xistin destên xwe. Tangên britanî di van neqeban re derbas bûn û zora xwe dan tangên elemanî û talyanî; bû şerê tangan, şerê kisoyên fola. Di vî şerî de xesarine mezin gihaştine tangên her du aliyan û ingilîz qederê çar pênc kilomêtiran pêş ve çûn û hin gir û mitik xistine destên xwe. Stola ingilîzî jî pardariya vî şerî dikir û bi topên xwe ên dûravêj li baskê dijmin ê çepê û li riyên pişteniyê dida.

Bi vî awayî sefha hicûma ingilîzan a pêşin qediya bû û ingilîzan xetên mihwerê di pênc deran de neqeb kiri bûn. Sisê li aliyê eniyê yê bakur û dido ji aliyê eniyê yê nivro. Qewetên hevalbendan ev neqeb hêdî hêdî fireh dikirin.

Neqeba ko eskerên ewistralî di roavayê Elemeynê, nîzingî girê Eqaqîrê vekiri bûn ji hemiyan mezintir û firehtir bû. Li 3ê Çiriya-Paşîn Romel ji bo girtina vê neqebê ji qewetên elemanî liwayek piyade û liwayek tang pêş ve ajot. Liwa elemanî di bin himayeta tangan û di pişt gir re qesta pêş kirin. Herçî ewistralî di bin himayeta tangên ko di peravan re dimeşiyan û di bin himayeta topên stolê de baskê liwa elemanî ê çepê li xwe badan û kirin li liwa elemanî wer bên. Romel di pêşberê vê weziyetê de refek stûka bi ser ewistraliyan de rêkir û ji milê din pêncî tangên din jî şande hawara piyadeyên xwe, da ko liwa piyadê yekcar neyete pêçandin. Lê tangên ingilîzî ên ihtiyat li tangên Romel der bûn û ew bi şûn de vegerandin. Ewistraliyan zor dida elemanan.

Li 4ê vê mehê Romel bi xwe di qada nîvro de bi emeliyateke lehiwandinê mijûl dibû. Di qada navîn de kumande di destên generalê talyanî Maryiti de bû. Romel emirî wî kir ko di navbera Dêrilincar û Riwêsatê yanî di qada navîn de rabe berhicûmê û barê qewetên bakur sivik bike. Talyanan weke hergav û elelisûl nikari bû bi karê xwe rabin. Generalê talyanî gava vi hali dibine bêi ko pirsa xwe bi Romel bêxe radibe menawreke din çêdike û eskerine din yên ko li baskê wî ê çepê bûn û ber bi nîvroyê eniyê şargeh bû bûn radike hicûmê.

Ingilîz li ber fikan aekinî bûn û li hêviya vî tiştî bûn da ko bizanin di pêsiya vî eskerî de erdên neleẍemkirî kîjan in. Eskerên mihwerê gava qesta pêş dikin; ingiliz wan erdan dibînin û eskerên frensizî, nûzêlandî û yewnanî di bin himayeta tang û balafiran de berdidin qewetên mihwerê.

Romelê ko di dawiya qada nîvro de bû pê hesandin. Romel bi balafira xwe di ser qada şer re firiya. Li aliyê bakur ewistraliyan zor dida elemanan û dikirin li wan wer bên. Di navbera Riwêsat û Hiimêmatê re 500 tangên britanî pê li xetên mihwerê dikirin. Herçî aliyê nîvro, tê re jî frensiz, nûzêlandî û yewnanî dikirin di bakurê Qetarê re li baskê mihwerê ê çepê bizivirin.

Romel li ber vê xeterê giraniya tangên xwe di bin fermandariya general Rîter von Tûma da dadixe qada şer. Lê Romel bi vê tevdirê jî tu havil nake. Ji ber ko li aliyê bakur herçî perav û girên dorê keti bûn destên britaniyan û di wê qadê de tangên mihwerê nema dikarî bûn xwe tev bidin. Britanî di neqaba ko di nîvro de çêkiri bûn; tê re ji ber bi pêş çû bûn û bi vî awayî her du baskên qewetên mihwerê herdayî ma bûn. Li ser vê yekê di dirêjahiya eniyê de qewetên mihwerê ji ber britaniyan radibûn û xwe didan paş.

Sibetirê fermandariya britanî danezanek belav kir û tê de got ko piştî şerekî ko 12 rojan ajotiye qewetên mihwerê şikestine û baz dane. Li gora raporên pêşin di van 12 rojan de 9000 hêsîr ketine destên britaniyan û ordiwa britanî 250 tang û 270 topên mihwerê şkênandine û 300 balafirên wê avêtine erdê.

Di van 12 rojan de balafirên hevalbandan 9000 carî dirêjî qewetên mihwerê kirine.

Romel piştî ko ordiwa wî di xeta Elemeynê de şikest û baz da berê xwe da Mersi-Metrûh û li paş xwe çend firqeyên talyanî ên piyade hiştine da ko ew êrîşa britaniyan biwarqilînin. Di vê navê de Romel ordiwa xwe wê bikira xeteke nû û ji nû ve şerê britaniyan bikira. Lê ev plana Romel jî re çû şerî. Firqeyên talyanî berî ko bi karê xwe rabin xwe teslîm kirin û ji ingilîzan re gotin; eleman revîn û em di çolê de bi tena xwe hiştin. Here weleh ji wan re pasban û notirvanin diviya bûn da ko wan ji tada neyaran biparêzin

Bi vî awayî brîtaniyan gelek nizingî li giraniya ordiwa Romel kiri bû. Di pêşberê vê weziyetê de Romel qederê sed tang û çil stûka rêkirin ber brî'aniyan. Dema ko van tang û balafiran şerê brîtaniyan dikir giraniya ordiwa Romel ji Mersî-Metrûh rabû û berê xwe da Sîdî-Beranî. Lê brîtaniyan eltabî ne dida. Li 9ê mehê brîtanî ketin Mersî-Metrûh û jê dane pey qewetên mihwerê. Peraşû'îstên frensizî beriya ordiwa Romel ji balafiran daketine balafirgehên Mersî-metrûh û balafirên neyar li erdê xerab kirin û li 11ê mehê ordiwa heştan ket e Sîdî-Beranî. Romel berê xwe da bû Tobriqê: Tobriqa ko çend caran bû bû asêgeha brî'aniyan.

Li 13ê mehê ordiwa heştan kete Tobriq û Bardiyayê. Romel di Helfayê re berê ordiwa xwe da Lîbyayê, ber bi Derna û Bîngaziyê. Li gora danezaneke brî'anî ya ko li 15ê mehê hate belav kirin xesara qewe'ên mihwerê heta niho kuştî, birîndar û hêsîr 75000 peya ne. Çek û posatên ko ketine destên brîtaniyan bê hed û hi ab in. Qewetên mihwerê direvin, ordiwa heştan daye pey. Li gora texmîna bawîrên hevalbendan ordiwa heştan û qewetên emêrîkanî yên ko di Tûnisê re tên di Trablîsxerbê de wê bigehin hev û bakurê Efrîqayê ji talyan û eleman rêş bikin. Lê vê carê bi malîştinke wer pak bimalin ko şopa solên neyar jî ji qûma Efrîqayê wê bixeritînin.

FAS Û TÛNIS Û CEZAÎR — Li 8ê vê mehê, roja Yekşembê, piştî nîvê şevê, saet siseyan de radyowên emêrîkanî banî guhdarên xwe dikirin û digotin: Elo... elo... ev der Boston... Weşîngton... Şîkago... Fîladalfiya... ye... guhdarên delal ji ber radyowên xwe ramebin: piştî çend deqîqeyên din Mr. Rûzwelt bi xwe ji we re nûnçeyine mihim wê bidit zanîn.

Ew çend deqîqe li guhdaran borîn, Mr. Rûzwelt peyivî û ji dinê û alemê re da zanîn ko eskerên emêrîkanî di Etlantîk û di Behira-spî re daketine Fas û Cezaîrê. Mr. Rûzwelt di gotara xwe de ji miletê frensiz re got ko ji vê hereketê mexsed derêxistina qewetên mihwerê ji bekurê Efrîqayê ye. Ji Milê din Serekcimhûrê Emêrîkayê ji frensizan re dida zanîn ko ew erdên frensizî her frensiz in û ewê her frensiz bimînin. Rûzwelt ji eskerên frensizî re yên ko di Fas û Cezaîrê de ne digot ji bo qelandina dijminê miştere k arîkariya eskerên min bikin û herçî zabit û kûmandarên we ne divê xwe bêxin bin emirê fermandarê min.

Gava Rûzwelt li ber mikrowa radyowê daxaft 500 vaporên barkêş, tijî çek û esker, 350 cenke di digel çend vaporên balafirhilgir di beriya şevê de bêdeng û ji ker ve nîzingî li reşaniyê kiri bûn û esker, top, tang, mitralyoz û her texlît hacatên cengê dadixistin peravên Fas û Cezaîrê. Balafiran jî di ser erdên wan welatan re dilîriyan û ji xelkê û ji eskerên frensizî re beyaname tavêtin.

Serfermandarê hemlê generâl Eyzenhawer jî bi beyanaman şîret li eskerên frensizî kirin û ji wan daxwaz kir ko arîkariya wî bikin û bi eskerên wî re şerê eleman û talyanan bikin û wan ji Efrîqayê derînin.

Ji milê din generâl De Gol serek û serfamandarê Frensa-şerevanî li ber radyowa Londrê peyivî û ji frensizên Efrîqa bekur daxwaz kir ko arîkariya generâl Eyzenhawer bikin. Generâl Ka'rû, nimînende û fermandarê Frensa şerevanî, di wela ên rohale ê nîzing de, ji ber radyowa rohelat ev tişt bi xwe tekrar kirin.

Digel vê hindê eskerên frensizî di hin deran de dest birine xwe û bû şer. Lê vî şerî gelek dom ne kir û li 11ê mehê bi emirê Emîral Darlan eskerên fransizî çekên xwe danîn û vegeriyan qişleyên xwe. Belê Emîral Darlan wekîlê merêşal Pê en yê ko li Efrîqayê bû û şerê emêrîkaniyan dikir piştî ko elemanan direjî erdê Fransa nevegirtî kirine bi emêrîkaniyan re mitarekêk imza kir û bû hevalê wan.

Li ber vê weziyetê û li 11ê mehê Hîtler emir da û ordiwa elemanî dest bi vegir ina Frensa nevegir î kir. Hîtler da zanîn ko dilê ingilîz û emêrîkaniyan heye di nîvro re dirêjî Ewropayê bikin: ji lewre eskerên elemanî wê dakevin he'a peravên Frensê yên nîvro, yanî Behira-spî. Talyanan jî esker derêxistin girava Korsîkayê.

Herwekî me got Darlan derbasî aliyê hevalbendan bû û da zanîn ko merêşal Pêten ji ber ko rast bi rast ketiye bin hikimê elemanan nema dikare fikira xwe bibêje. Lê fikira Pêten, parastina Fas û Tûnis û Cezaîrê ye. Darlan paşî ko beyaname belav kir generâl Jîro kire serfermandarê qewetên frensizî yên Efrîqa bakur.

Lê De Gol herekela Darlan venenasî û da zanîn ko Frensa şerevanî bi teşkîlata ko li bakurê Efrîqê çêdibe ne eleqedar e.

Herçî merêşal Pêten wî jî bi radywoê da zanîn ko Darlan bêemriya wî kiriye û bêwext agir û brûskên eskerên frensizî daye betal kirin. Ji milê din Pêten dibêje ko ne di bin hikimê tukesî de ye û fikira xwe bi serbestî dikare eşkere bike.

Herçî şer, di pey emêrîkaniyan re ingilîzan jî esker derêxistin Fas û Cezaîrê û piştî mitarekê ingilîz, fransiz û emêrîkanî berê xwe dane Tûnisê. Elemanan bi balafir û vaporan esker derxistine Bîzertê, bendereke Tûnisê. Hevalbandan niho di Tûnisê de bera elemanan didin. Herçî eskerên frensizî yên ko li Tûnisê bûn wan jî rahiştin elemanan.

Ji milê din ordiwa heştan daye pey Romel û wî ber bi Bîngazeyê ve tajo. Bi vî awayî eleman di navbera du agiran de mane.

Şam: 15 Çiriya-paşîn 1942 NÊREVAN

ŞAM — ÇAPXANA SEBATÊ — 1942

SAL 10
HEJMER 52

ÇARŞEMB
20 KANÛNA PAŞİN 1943

# HAWAR

ANNÉE 10
NUMÉRO 52

MERCREDI
20 JANVIER 1943

KOVARA KURDÎ ✦ REVUE KURDE

DI VÊ HEJMARÊ DE



## GAWESTIYAYÎ

### Û KOÇERÊN KURDAN

**Berî dora sed salî pirê kurmancan koçer bûn. Havînên xwe li çiyayên Kurdistanê ên heftreng û di nav gul û gulîlkan da dibihartin. Pez û dewarên xwe bi nefel û giyayên zozanan xurt u qelew dikirin. Zivistanê, berê xwe didan nîvro, ji ber pûk û berfa zozanan direviyan, dihatin germiyanan, biniya çîyayên Kurdistanê. Ji Ferêt heta Dicle li vê deşta hana fireh cî cî koçeran datanîn.**

**Di vê çûn û hatina koçemalî da gayên zexm û xurt, hûr û mûrên malên wan hil·digirtin. Yekcaran çend malan ji ber qelsbûna gayên xwe nikarî bûn tevî êla xwe bimeşin, ji wan vediqetiyan; di cîkî têr av û giya da çend rojên xwe dibihartin. Paşê diçûn digihiştin heval û hogirên xwe. Hinek ji wan gawestiyan heyfa xwe ji warê xwe ê nû ra dianîn û li wê cî digirt û diman.**

**Ji ber wê ye ko di pey terikandina koçeriyê ra em dibinîn, birek ji eşîrekê di germiyanan da ye; birekî din li çiyê bi cî bûye. Ev ji hev** veqetîn bi sebebeke din be jî ji wan ra gawestiyayî tê gotin. Wek remzekê hatiye nas kirin; gawestiyayî ew in ko ji eşîra xwe a bingehîn veqetiyane.

Ger em li eşîrên deşta biniya Mêrdînê binêrin, wek eşîrên Kîkan û Deqoriyan yên ko eşîrên giran in emê bibînin ko tev da ne ji bavekî ne, ji eşîrên din gihane hev.

Mesela Deqoriyê Amûdê: bi xwe birekî de criyên welatê Wanê ne. Ew bi xwe jî herwekî min got ne ji bavekî ne, di nav wan da birê Seyida heye ko di Kurdistanê da sê çar bir in. Qebîla rehmetî Seyidxan jî yek ji wan e, qebîla Gabara qismekî ji çiyayê Şingalê ye, kîkan jî wisa ye. Tê da Remî, Kosekan û Omeriya hene. Evana tev da ji eşîrên din in, Ev di wê wexta koçeriyê da ji eşîra xwe bi çi bawayî be, veqetîyane û di nav Deqoriyan û Kîkan da mane; bûne kikî û deqorî. Pirê eşîrên Cezira Sûriyê wiha ne.

Lê; herçî eşîrê xerecna ko îro temam bi erebî dipeyivin; gelo ji kû ne? Evana ji çiyayê Têrika dahatine biniya germiyana Mêrdînê. Di rê da gayê hinên wan westiyane û li dora Dêrikê mane. Yên ko li dora Dêrikê mane ko îro bi navê qebîla Rûta deng dayîne, bi xwe xwerû kurmanc in ev û xerecna pismamê hev in; êdî çawan bûye ko xerecna zimanê xwe winda kirine, divêt ev bête kolan.

Bi min çîroka gawestiyan ev e.

**QEDRÎ CEMÎL PAŞA**

# CIVAT

## — 2 —

### CIVAT NE HAVILA LIBATAN E

Berê hati bû gotin ko civat xwedi dirok e û pêşve diçe. Li ser vê rastiyê em hê guman bawer dikin ko « karê civatê ne ji neheşiyê ye.»

Civat, bi çend girêkan girêdayi ye ko tevger û ajotina xwe di sinorê van girêkan da tekûz dike. Gava civat ji tixûbê wan derkeve ji civatê dikeve. Ji ber vê yekê civat her di sinorê van girêkan da ye:

Pêgirt ( adet ), şerde ( terbiye ), ol ( diyanet ), zêw, gewzin ( bediiyat ) h. p.

Ma kes kare bêje: vana libatan çêkirine û pêkinên civatê ji libat in?

Ji xwe civatok ji ber vê gumanê bi şûn de maye û di vi bomanê paşin de bi awakl qels di rêza zanistiyê de cih girtiye.

Çiqas pisporên rohilat û roavayi hebûn di vê gumanê de bûn. Wan bawer dikir ko civat di dest libatan de lizkek e. Digotin: libat çawa bixwazin bergiya jina civatê dikarin biguherinin. » Hin bûyer ji beman li vê dorê bi bawerlya me dilizin. Pir caran hatiye ditin ko rajorekl ( metbû' ) xurt û zorker diroka gelekl li ser rêzikên gewza xwe ajotiye û gel bivê nevê rajêriya ( itaet ) wi kiriye. Bi pirsek wi xwe di gêdûkên mirinê wer kiriye.

Gava dirokê li rû em di çav xwe rakin wisa tê ditin. Lê ko em kûr binerin û em bigihên bingeha bûyeran emê bibinin ko gumana me ji leylanekê pêve ne tu tişt e

Bo naskirina libatan divê ko em xwe bigihênin bingeha jina civata ko ev rajor gihandiye.

Serxwerabûna kurdan ne işê peyayekl ye. Heke peyakekl daye pêş kurdan yê ko ew rakiriye û ajotiye kurd in, dilt, perişanl û giyanê gelê kurd e, serxwerabûneke bindesti li ber serdestiya zorker e. Yê ko ola bolşewikl di nav ûrisan da daniye disa ne Lênin e; birçitl, perişanl û şerpezeyiya gelê ûris e.

Gava van bûyeran em kûr di çavên xwe rakin emê bibinin ko bûyer û homan hin bi hin di giyanê civatê de raman û awanine nû pêk tine û libat ji hi hêsanl hinl rajêriya van bûyeran dibin an bo cihanina van bûyeran ji nişkave pêl dide, li hev dikeve.

Kêf û gewza me bi xwe di bin xurtiya civatê de ye. Em awayê jinê û gewzê ji civatê hin dibin. Ji liz, ereq, tûtin, cilên hevrişim hez kirin û ne bezkirin ilim bi havila civatê ye; ne bi xwestin û hezkirina libatan e. Giş bi pirsek nuh derketi, texlit, ji milê civatê ji libatan ra tê pejirandin ( qebûl ).

Ji xwe şerdeya mirov nişana civata xwe bildigre. Hiş, jiregi, şarezayiya libat ji giyanê civata wi tê. Şerde, rabûn û rûniştin û mêraniya kurdeki tavil kurditiya wi xuya dike.

Dûmak: Civat ne havila libatan e, bi vajayi libat havilên civatê ne.

( Dûmavik heye ) RESID KURD

# HEKE TE

## DIVÊT TE DOST HEBIN

### JI KITÊBEKE INGILÎZÎ BI NAVÊ « HOW TO WIN FRIENDS »

Li gora vê kitêbê yê ko dixwaze dostên wi hebin divêt şertên jêrîn bîne cih:

1 — Bi xelkê dora xwe eleqedar hibin. Ew pê şa dibin û meyildariya we dikin.

2 — Li şûna ko ji ber fikirên wan gazindan ji xelkê bikin; gub bidin gotina wan û bala xwe bidin ko wan seh bikin. Ev guhdariya xêrxwaz dihe sebeba dostaniya wan.

3 — Çiqas ji we hat ewçend bi xelkê re mekevin cedelê.

4 — Heke bon ketin cedelê û we bi xelkê re da ber hev, di cedelê de nerm bibin û fikira xelkê bi qedir bizanin. Xelk ji wê qedirê fikira we bizanin.

5 — Heke te dît ko te xelet kir û tu xapiyayî, li ser xeletê mesekine, zûka mikur were.

6 — Guhdarekî qenc û bisebir be. Rê bide xelkê ko qala nefsa xwe bikin. Xelk ji vî tiştî gelek hez dikin.

7 — Gava te yek nas kir, navê wî qenc ji ber bike û dema ko pê re daxêvî navê wî her û ber bîne ser zimanê xwe. Ji guhê xelkê re ji navên wan çêtir û ahengdar mûsîqî nîne.

8 — Heke tu bêgav mayî û divêt kêmahiya yekî bidî rûyê wî; berî ewilî çêl li wesfên wî ên qenc bike. Gava te dît ko kêfa xwe ji te re anî kemahiya wî sivik bike û wê bi çend pirsan jê re bibêje; hêî ko lî ser wê gelek bisekinî. Bi vî awayî ew rûyê xwe ji te ba nade û li kêmahiya xwe hişyar dibe.

9 — Di dema mibahesê de gotina xelkê bi tu awayî mebire. Rê bide wan ko tûrikê xwe vala bikin. Ko tûrikê xwe vala kirin ewê çêtir guhdariya te bikin.

10 — Her rûken be. Xelk ji rûyên bimad direvin, lê nizingiyê li rûyên biken dikin.

ŞÎRETBÊJ

ÇÎROKA TARÎXÎ:

# KELEHA ŞAHÎN

Yemame kete dîwanxana xatûna xwe Zeynoyê, melîka Tidmirê. Zeyno di dîwanxanê de wek pilinga ko riyên felatê lê hatine girtin, bê sebr û ...jerar diçû, dihat. Zeynoyê gava çav bi Yemamê kir; sekinî, berê xwe da wê û got ê:

— Yemame ez îro ji her wextî bêtir hewcedarî xizmeta te me. Di van deravên dişwar de diyêt tu fedakariya xwe careke din, heye ko ji bo cara paşîn, şanî min bidî.

— Ez gorî, min çend caran ji xatûna xwe re gotiye û ez bawer dikim ko baniwa min delêletên wê j îdîtine ko di vî dilî de du evîn hene û ev dil bi tenê ji bona wan hiltavêje. Evîna welêt ya ko di ...exsê xanima min de tête pê. Û evîna Rebî kurê ...abir, ew siwarê ko şûr û mirtal û canê wî hêvî darê fîrsendekê ne, da ko xwe ji bo text û tacê melîkê feda bike. Ka bêje ezgorî çi emir û çi ferman e?

— Yemame, text û tacê ko tu dibêjî di talûka mehiwbunê de ne. Eskerên Romayê giha tine devên deriyên payîtextê. Ez melîka Tidmirê, ji min re divêt welatê xwe ji xerabiyê û miletê xwe ji hêsîriyê xelas bikim.

— Ez çawan dikarim xizmeta xanima xwe bikim?

— Lezê hide xwe û here nik Rebî kurê Cabir, yarê xwe û fermandarê Keleha-Şahîn. Divêt tu xwe pê re di kelehê de hepis bikî da ko keleh beta dawiyê li ber xwe bide. Û heke kelehên payîtextê ên din bikevin destên dijmin jî bila Rebî teslim nebit û heta segmanê xwe ê paşîn şerê romaniyan bikit. Heke tu pê re bî Rebî tucaran naçe rayê.

— Herwekî xanima min gotiye ewê holê jî bibe..

— Yemame! ji bîr meke eskerên me di rastê de bişkên û kelehên din bikevin destên dijmin jî Keleha-Şahîn divêt li ber xwe bide û heke romanî rojekê ketin ê, bila tê de ji cendekan pêve tu kesî nebînin.

— Bi xatirê te ez gorî, hetanî ko destê segmanekî birîndar di qevda şûr û xencerê de ye romanî nakevin Keleha-Şahîn.

* *

Tidmir.. ew şaristana ko di orta beyabanê de wek guleke ter û taze serî hildida; di bin hikimê Romayê de bû. Di wextê Zeynoyê de Tidmir ji nîrê romaniyan xelas bû bû û bû bû payîtextê kişwerê rohelê.

Lê tiştê ko qeyserên din ji dest da bûn, Orîlyanos dixwest wan bi şûn de vegerîne.

# DÎWANA MELÊ

— 37 —

Xelkino li min kin şîretê ew dîlbera zêrîn kemer
Min dî di halê xeflêtê hat der ji bircê wek qemer
Hat der ji birc û penceran dil girt û da ber [xenceran
Ev reng e halê dîlberan lew aşiqan xwîn bû ceger
Qelb û ceger min bûn birîn lewra ko jê tên [av û xwîn
Ey can were halim bibîn da rûh ji qalib bête der
Canê min bête ser cesed mizgîn bi afaqan resed
Alem hemî pê bin hesed însan û cîn û canewer
Alem hemî têk bûne sef seyirîn li şahê min bi xef
Hatin temaşa çarteref şatir xumar tayin di ber
Hat padîşahê pir sipah qamet elîf dêm şibhê mah
Dad û meded sed ah û ah zilf û eqarîp, têne ser
Kuştime xelkino eqrebê mestim ji şewqa xebxebê
Tali' tenê min d'kewkebê îro eqarib têne der
Îro eqarîb hate xar çû nîvê baxê gulîzar
Ew be çeyê her lê bihar lew bilbiljan lê qal û şer
Lê hed ji dil nalî û keyb da baxçeyê rîdwan [û xeyb
Wan naliyan nînin çi eyb sohtîne em dil bû seqer
Sohtin li min cerg û hinan werdên di dor [girtin xunav
Zilf hate ser lêkir belav bayê nesîmı wextê seher
Tirsim mixalif ba ditê zilfên di dora cebhetê
Rakit qiyam wê saetê alem bibit zîr û zeber
Zahir dibêjin pendegîr da dil nedî zifla hesîr
Şibhê melê d'mînî esîr guh dêre qewlê mu'teber

Orîlyanos qaîl ne dibû ko Tidmir deriyê welatên rohelê di destên ereban de bimîne. Orîlyanos da pêşiya ordiwa xwe û dirêjî Tidmirê kir. Zeyno bi eskerên xwe ve derket peşiya qeyser û serdarê romanî.

* *

Orîlyanos ji nav xelkê derketi bû. Ew kurê gundîkî bû; ne pisaxa ne jî pismîr. Lê mêrekî qenc û çeknas. Orîlyanos wek segmanekî adetî kete ordiwê û di gelek şeran de bi mêranî û şehrazahiya xwe serevraz bû. Piştî çend salan bû fermanderekî xudan gotin û ji eskerên xwe hebandî.

Di vî wextî de Romayê mezinên xwe ji nav mirovên hêja û xudanvên dibijartin. Orîlyanosê segman bû fermandar, bû qeyser.

* *

Zeyno... keça mîrê ereban bû; keça Emro, Emroyê iraqî. Navê wê Zeyneb bû, ereban jê re digot Zeba, romaniyan jî Zenobî, kurdan jî Zeyno digotin ê. Bavê wê, Zeynowa bedew da bû mîrê Tidmirê. Mêrê wê miroveki bêvên û kêmdil bû; serdestiya Romayê li ser xwe

qebûl dikir û wek relyekî xweyîkî dida Jûlyanos û Ewgûstos.

Mêrê Zeynoyê mir û Zeyno li ser textê Tidmirê bi tena xwe ma. Zeynowa dilqewîn bû melîka Tidmirê û çavên xwe da kişwerkişayiyê. Ciwab da qeyserên romanî; welatê xwe ji bin nîrê Romayê derêxist. Ordiwên wê giha-tin erdê Misirê, stolên wê di Behirên spî û sor de welatine nû vedigirtin.

Romayê ev hal xerab didît. Civata rîspiyan qerarek da û got: Yek ji wan her du stêrkan divêt ji ezmanê rohelê bête êxistin. Ordiwa Orîlyanos berê xwe da Tidmirê. Zeyno terka payîtextê xwe da û çû pêrgîna neyarê xwe ê tacidar; bû şer.

*
* *

Zeyno di sala 267an de li ser textê Tidmirê rûniştî bû. Di sala 272an de eskerên wê û yên Romayê li hev dixistin.

Zeyno şûr bi dest, dabû pêşîya eskerên xwe û di deşt û sehrayên Erebistanê de bi mêranike kêmdîtî şerê romaniyan dikir. Lê Xwedê jê re hez ne kiri bû. Rexma her mêranî û fedakariyê ordiwa Zeynoyê şikesti bû û Zeyno vegeriya bû Tidmirê û tê de asê bû bû. Romanî ji her alî li Tidmirê çarnikar hati bûn. Zeyno pê dihesiya; didît ko demên pa în nîzîng bûne. Zora wê dê biçiwa. Dida eqilê xwe; ma intihar ne çêtir bû.

Dema, Yemame cêriya bedew, yar û daylana Rebî kurê Cabir keti bû afa baniwa xwe, Zeynowê ev tişt didan eqilê xwe û bê sebir û qerar di dîwanxana xwe de diçû, dihat. Belê di wextekî welê de Zeynoyê goti bû Yemameyê ko Cabir heta peyayê xwe ê paşîn di Keleha-Şahîn de pê bide erdê. Yemamê lê vegerand û goti bû:

— Ezgorî tu xatircem be, heta ko destê segmanekî kor tê de xwe tev dide romanî nakevin Keleha-Şahîn.

Yemamê terka xanima xwe da û qesta Keleha-Şahîn kir. Rebî kurê Cabir di kelehê de tidarika xwe dikir. Sed mêrên mêrxas xwe ji mirin û hatinkuştinê re kar kiri bûn. Kurê Cabir ji jorê bircê de, gava çav bi daylana xwe kir; deng lê kir û got ê.

— Te xêr e Yemame. Di vê demê de di van deran de tu li çi digerî. Ma tu nizanî ko vê êvarê an sibe romanî li birca me wer bên û emê tê de, di bin mihaserê de bimînin. Û nakeve serê min ko keleha me ji deh rojan bêtir li ber êrîşa dijmin bikare bisekine.

Yemamê lê vegerand û got ê: Kurê Cabir, mêrxasê mêrxasan; deriyên kelehê ji canê min, dergehên dilê xwe ji giyanê min re veke. Ez hatime nik te; ezê nik te, ezê nik we bimînim. Ev keleb ne mîna te gotiye bi derbasbûna rojan; lê bi tenê bi xelasbûna dilopên xwîna me dikare bikeve destên dijminan. Kurê Cabir, rihniya çavên Yemamê; ji min re sondê bixwe ko tu kesê zindî terka kelehê nadit. Belê ji min re sondê bixwe ko kelehên Tidmirê tev de bikevin jî keleha me heta segmanê paşîn dê li ber xwe bidit.

Kurê Cabir: Bi serê te ê delal hezar sondî dixwim ez.....

Deriyên kelehê vekirin. Yemama bedew, cêriya Zeynoyê, daylana Cabir kete hundir.

# PENDNAME

Hingî geriyam ez li dinê min qe nedî
Kes misli me bê yar û bira, dost û xwedî
Rêzek me nivîsî me nema eyb û fedî
Rabû ji xewê der seherê da semedî
Ya reb tu ji bo miletê kurdî meded î.

Ey kurdê li dor şax û çiyan deşt û newalan
Çawan dikujî yar û biran dost û hevalan
Her wextî dikêşim keser û derd û mitalan
Dijmin ji xwe ra ger bibine keys û fesalan
Dê jehreke qatil wekî selwa bi we dî.

Xweşxwanê di min çûne semawati felek
Hişyar dikirin cin û şeyatîn û melek
Rabin ji xewa cehlê vekin çavên di belek
Men aşe cehûlen sibulen nari selek
Ev cehl û nifaqa me hemî bê xeredî.

Rabin ji xewa cehlê bikin cehd û şer e.
Lewra me bi guh seh kiriye ev xebere
Barî ko emir kir bi îbadet ji me re
Go evdê mino rabe çi bikî ez bi te re
Hêvî me heye em bigirin vî beledî.

Ger hêvî heye vî beledî em bigirin
Rabin herçî ko kurdin tevî hûr û gir in
Malê xwe bibin top û teyaran bikirin
Serbestî bibin, yan li dinê em bimirin
Min her-rî ûraqil wetenî wel-hesedî.

Herçî ko me gotî ji we ra guh bidinê
Alem hemî însan e ji bil me bi tinê
Bê top û teyare, bi tenê man li dinê
Ciz'ek ko ji îmanê ye hib-ba wetenê
Lew pêteke agir ji weten da kebedî.

Şer'a nebewî hikmê hedîsa wî hilat
Bo şêx û melan ma li dinê fitr û zekat
Herçî ko Cegerxwîn e nema sebr û tebat
Zanim ko heye piştî heyatê ra memat
Lewre ko nehim xeyrî Xwedê kes ebedî.

CEGERXWÎN

Romaniyan Tidmir mihasere kir. Segman û siwarên wan ên zirehpûş berda birc û kelehan. Keleh li pey hev diketin destên wan; ji Keleha Şahîn pêve. Keleha-Şahîn, keleha cabir û Yemamê, bi sed mêrên xwe ên sondxwarî li ber wan disekinî. Belê Keleha-şahîn li ber êrîşa romaniyan, wek dara ko li ber bayê kur disekine, disekinî. Lê keleh jî wek wê darê hin bi hin li xwe dişkênand û serê xwe xwar dikir.

Wê rojê, segmanên kelehê, bi rojê ve bi tevdaneke neadetî xwe tev didan. Ma çi li wan qewimî bû. Yemamê ev tişt ji xwe dipirsî. Yemame gelek li hêviyê ne ma. Kurê caebir nizingî lê kir û got ê:

— Yemame! nizamin tu bîr dibî, keleha me gihaştiye çi halî? Zadê me ne maye. Segmanên me li şûna tîran rotikan dixin ber kevanên xwe. Ji milê din ez dibînim ko eskerên min dikin li min rabin.

Yemame: Belê Rebî ez bîr dibim. Gava min soza xwe da bû melika xwe, min hisabê vî tiştî, hisabê her tiştî kiri bû. Digel vê hindê min gote melika xwe ko heke rojekê romanî ketine Keleha-şahîn, tê de tu peyayê zindî nabînin.

Rebî: Min jî soza xwe daye te. Û heke rojekê dijmin keleh vegirt ezê intihar bikim. Lê....

Rebî li hire dengê xwe birî û gotina xwe ne bire serî. Yemamê destê wî girt û hêdîka jê pirsî: Û lê...

Rebî: Romaniyan qasidê xwe ji min re şandiye. Şertine bişeref berpeyî me dikin. Eskerên min jî kelehê berê xwe bidin sehrayê û berkes bi aliyê xwe de wê here.

Yemamê: Û tu...

Rebî: Ez jî... Belê min jî hêsîr nagirin.

Yemame bihinekê sekinî û paşê gote Cabir: Heta sibê em bidin eqilê xwe. Bi spêdê ve em jî dikarin qasidê xwe ji fermandarê romanî re bişînin.

Rebî û Yemame ji hev bi dûr ketin. Rebî wek miroveki şermisar serê xwe kiri bû ber xwe û hêdî hêdî dimeşiya.

* * *

Sibetirê gava roj hildihat, tîrêjên wê di kelebê de ji Yemamê pêve, ne didan tu peyayê zindî.

Yemamê bi şev jehir xisti bû ava kelehê. Rebî û eskerên wî, hemiyan jê vexwari bû. Yemame li ser soza xwe sekinî bû. Romanî biketena kelehê jî, tê de tu peyayê zindî wê peyda ne kirana.

Yemame xencer bi dest, di ber cendekan re borî, li wan hûr bû, ew wek bijîşkekî seh kirin. Rih di tiwan de ne ma bû. Piştî ko qatliya xwe pê anî; li ber cendekê yarê xwe sekinî, xencer di singa xwe rak ir û ket ser kelaşê Rebî kurê Cabir. Xwîna Yemamê a sor û germ li wan aliya, qey vê xwînê ew digihandin hev.

* * *

Deh roj keti bûn navê. Fermandarê romanî hêj li hêviya bersiva Rebî bû. Qasidê wî xuya ne dikir. Roja 'deban romaniyan didît ko di ser kelebê re kurt û qertel û dubrakin difirin. Ma çi li ehlê kelehê qewimî bû.

Romaniyan nizingî li kelehê kir. Bibin bi kelehê keti bû. Romaniyan ne kelehek lê gornistanek zemî kiri bû.

Tarîx jî, ji mîlada Îsa pêxember re hêj 272 sal diviya bûn.

Dibok: 25 Çiriya-Paşîn 1942

BIŞARÊ SEGMAN

## ŞAHÊ ECEM

### HER DU JIN Û CÊRIYA WÎ

Rojekê şahê ecem li ser textê xwe ê gewherkirî aldayî, bi hilketineke şairane bi nezim û wezin eber dida û şihir digotin.

Şah du jin û cêrîke delal habû. Jina wî a ezin ya ko navê wê ( Cihan ) bû li milê wî ê astê û jina wî a piçûk bi navê ( Heyat ) ê li milê î ê çepê rûniştî bûn. Herçî cêrî navê wê ( Beqa ) û û ew li pêşberê wan ji piyan disekinî.

Şah her du milên xwe li navtangên jinên xwe eranadin û bi pêtên çavên xwe cêrî himbêz kir û got:

Ez di nav du dil û du dilberan de rûniştî û tê de li xwe beyirî me. Nizanim kijanê i ser a din re bigirim û dilê xwe pê girêbidim.

Jina mezin Cihanê serê xwe niha ser sermilê h û got:

Tu padişahê cihanê yî, cihan te daxwaz dike. Kar û işên padişahê cihanê bi tenê bi cibanê dikarin herin serî.

Jina picûk Heyatê jî da eqilê xwe û got:

Belê ciban xweş û rind e, lê ji xweşiya cihanê re heyat divêtin. Heke heyat nine cihan bêî wê bi kêrî çi têt.

Şah gotinên her du jinên xwe jî ecibandi bûn. Dikir ko wan bi awakî mikafat bike. Lê di vê navê de Beqa ko ji piyan sekinî bû destûra xwe xwest ko ew jî hiştexîle. Şah destûra wê da û Beqayê got:

Cihan û heyat her du jî xweş in, lê her du jî fanî ne; îro hene sibe ninin. Tu ji xwe re beqayê . bixwaze ko abadînî bi tenê di beqayê de ye.

Şah kêfa xwe ji gotina Beqayê re gelek anî; ew rakişande xewgeha xwe; devê wê ji mirariyan, paşila wê ji mihbet û evînê tijî kir.

FARISÎXWÎN

# MIRDÊSAN Û
## GAWESTIYÊN WAN

Berî çend rojan Xwediyê Hawarê li ser bêjeya gawestî hin tişt ji min pirsî bû. Ji ber ko gawestiyên eşira me Mirdês ji hebûne û nemaze ez bi xwe ji gawestiyên wê eşirê me; pir û hindik dikarim di vî warî da bipeyivim. Ji bo ko bikaribim fikireke baş bidime xwendevanên xwe, divê ez çîçkekî li ser emareta ko eşîra Mirdês jê daketiye baxivim.

Mirdês, berê di kurdistana bakur da navê emareteke mezin bû ko mîrê wê li bajarê Egîlê rûdinişt. Îro ew nav li ser sê eşîran bi tenê maye ko ew eşîr koçerên Mirdêsan bûne. Piştî ko emareta Mirdês di hev da ket û bû sê keriyan, êdî xurtiya xwe wenda kir û roj bi roj berve qelsiyê bi gavên mezin diçû. Herwekî min ji şerefnamê, dîroka malbatê û çîrokên di nav eşîrê da zaniye; destpêka di hevdaketina vê emaretê bi hûyina sê ciyan dest pê kiriye.

Dema malbata mîrê Mirdês pir û mezin dibû, pismîrên ko çav didan mezinatiyê jî zêde dibûn. Dilbibewesên mezinatiyê di nava Egîlê û bin guhên mîr da nikaribûn herçiya di dilên xwe da bînin cih. Ji bo anînciha van daxwazan, di ber hilma mîr da derketin divya bû. Wan jî welê dikir. Yek bi yek di Egîlê da bi der diketin û berên xwe didan gund û bajarên keviyên emaretê. Bi vî awayî ji xwe ra heval û piştmêr diditin û destê xwe didane ser hêleke emaretê û nema mîrê Egîlê dinasin. Gelkê van pismîran nikari bûn daxwaza xwe bibin serî û di wê rê da serên xwe didan der. Hinekên wan jî mîna mîrekên Çêrmûk û Paloy jê ra li hev dihat û di rex emareta Mirdês da yek emaretên biçûk tanîn pê.

Di van ketin û rabûnên han da koçerên Mirdêsan digel mîrê Egilê rast mabûn û jê neqetiya bûn. Lê mixabin ko vê rastiyê geleki ne ajot. Di nîvê babilîska hejdehan da, pismîrên di nav koçeran da jî ji mîrê Eqilê kiz bûn. Vê carê wekî hersal zivistana xwe li deşta Gewran û biniya Diyarbekirê ne borandin; lê bi carekê ji welatê Mirdês bi dûrketin û daketin beriya Reqayê.

Ji vê bi dûrketinê Xweyn bû ko dilê koçerên Mirdês û vegera welatê Egilê tine bû. Hin zivistana xwe li beriya Reqayê kuta nekiri bûn ko pismîrên di nav koçeran da jî li hev keti bûn. Ji v n pismîran Evdil-Ĥey begê tevî hezar malî berê xwe da welatê Qonyê deşta Heymanê. Ew hezar mal îro li wî erdî binecî bûne, ko bi wan ra Mirdêsê Evdil-Ĥey dibêjin. Ên mayî jî divegera zozanan da bûbûn du biran Birek tevî Hacî Delî begê (1) çûbû Qerejdaxê û li vir derbasî pişta Diyarbekirê bûbû û li wir cih girti bû, ko bi wan ra ji Mirdêsê Têrikan (2) dibêjin. Birê mayî tevî Mihemed efendi di pişta beriya Reqayê da li qiracê Qeregêçiyan mabû ko bi van ra jî Mirdêsanê gawestiyan hatiye gotin.

Mirdêsanê gawestî wek her du birên mayî di warên pêşin da binecî ne bûne. Pir nêçûye, qiracê Qergêçiyan berdane û hilkişîne welatê

(1) Îro jî malbata axayên Mirdêsanê Têrikan li gundê Hacîdeliyê rûdinin ko bi navê mezinê wan ê pêşîn bi nav bûye.

(2) Gava êla Hacî Delî begê giha bû Qerejdaxê, pûg û şilîne mezin lê qewimî bûn ko zarok, kar û berxên xwe di nava têran da avêtibûn ser dewêr û biribûn zozdanan. Li ser vê bi wan ra jî Têrikan hatiye gotin.

Dûmahîk di rûpelê 11 han da ye )

# GELO DEM JI ZÊR E?

Ev meselokek welêye ko ên wê nizanin gelekî hindikin. Tevî vê eykê dem di pir kesan va radibire bê ko bala xwe bidinê. Ev meselok li ser zarê her kesî digere û tê bîra hemiyan; lê tevî vê yekê gava mirov hala xwe dide kar û xebata wan, xweya dike ko qîma xwe pê nînin an tê nagehên. Heke em bihesibînin, dê bibînin ko sêyikeke emrê mirov vala diçe. Ji ber ko herkes sêyikek emrê xwe dinive, sêyikekê jî dixebite sêyika mayî vala diçe.

Li ser meseloka jorîn û vî hesabê han, hinekan ji zanan gotiye: « kesê ko sêyikeke emrê xwe bê destkewtin vala berde, ew ji nezanê bihaye demê yê. Ev celeb mirov nizanin, ka dem ji zêr e an ji axê ye ».

Ev gotina han gelekî bi cih e. Lê gelo ew kesên ko sêyikeke emrê xwe dinivin û her du sêyikên mayî bê kar û xebat, her tor tor digerin, demê ji çi dizanin?!.. Derheqê van celeb mirovan da, mirov çi bêje hindik e. Bi tenê dikarim bêjim ko: zîvar ne ew kese ko bê mal û dirav e; zîvar ew e ko dema xwe vala dibore û di bihayê wê nagehê. Heke ji wan ra reben û bextereş jî bête gotin hêja ye.

OSMAN SEBRÎ

## BEYTA KEWÊ

HER BER LI CIHÊ XWE YÊ BI SENG E

Bêjin carekê kewek li jor Wan,
Derkefti bû bo sehran û geryan;
Hate gund li ber gundi dipirsi
Da bizanit çi ye ka halê kewan.
Ta ko gehişte li binya Gêman,
Nik hinde kewa yê bûye mêvan.
Nav wan de wi dit ribadeki çak,
Bi bejn û bala şirin e ezman.
Mêvani gelek xwezi dixwestin,
Ribad bibitin xizim digel wan.
Got: Wan çi ye halê we li vêrê?
Hûn çawan dijin li vêrê çawan,
Yêkcari eve gundeki hişk e.
Têk da xirebest û kevr û zindan
Eve saetek e ez li nik we
Ser min teng bûye erd û ezman
Ser min ev saet bûye hezar sal
Ax bo te Wanê hizar car ax Wan
Got: kewê ribad me heyf e iro
Tu li nav evan xiz û tozan
Zor ez bi xem im ji ber te bira
Tu li vêrê bibi li navi gûniyan
Wey ez neminim bo vi leşê ter
Geviskê biket li ser stiridan
Mixabin ji bo te lawê taz e.
Mixabin ji bo te katê reyhan
Tu bimiri li vi erdi bi jengi
Bê seng û biha bibi li nik wan
Niho zor nexweşiyê dibini
Li vê kora ko bê dexl û bê dan
Tu beste were biçine Wanê
Min xwişkek heye bi hisn û zor can
Dê dem te bibê next û herwe
Ew d'init giraniya xwe zêran
Xwişka nin Zileyxa ye li wexti
Ninin weki wê di navi Gurcan
Belki weki wê li beheştê ninin
Nav hemi peri nav hemi hûriyan
Zor şox e we zor şeng û şepal e
Bejnek heye wek esmina cowan
Dêmek wê heye ji rojê rontir,
Du çavêt belek bi kil û derman
Ev zilfêt xelek keftine ser rû
Didan sipitir in ji terg û gişkan
Ev birhû gelek reştir in j'qetran
Ev gerdena wek xezal û xifşan
Ev lêvêt weki gustirka Sileyman
Ev kezi weki têley û armûş
Ev xalê bi qelem hatine kêşan
Ev zend û milên hev weki şişey
Mala gelekan ya kirye wêran

## HEYAT

Eva pîrek heştê salî; qelûz bûye pişta wê
Meh û sala şikandiye dil û çeng û baskên wê
Zeman derxist ji dilan eşq, ji çavên wê şewq
[ û nûr;
Emrê wêna xilas bûye, xiyala wê pir li dûr
Rengê wêna, zer bûye wek pêlên darên Paîzê
Ken nizanê, daîm ebûs, daîm nexweş xaîzê
Çehrê wêna perîşan e, madê wêna kiriye
Tirsa qebrê d'xiyalê de, karê wêna girî ye
Lê dîsa ew dibê kanî ava jînê li kû ye
Ew betilî, ew kesirî, ew zila ko hişk bûye
Ew dixwazê bi vî canî li dinyayê her bijî
Dibê xwezka, min bidîta dinya ronik hin dî jî
Ey yê ko hêj d'çax û dema xortaniya xwe de ye
Eqil di ser, qewet li mil, pêlên eşqê dil de ye
Ev pîreka heştê-salî ko dixwazê hêj bijî
Nizam çima ji heyatê tu qehirî, tengijî.

HISÊN EMÎNÊ PERÎXANÊ

---

Ey lawê ko qenc û genc û taze
Padişahê heman û rewşa malan
Tu heste biçin beheşta dinya
Tu were bibin evan rûbaran
Tû bimêze evan herane kaniyan
Evi avêt weki cemed û befran
Van co û deravêt weki zivi
Yên tên dixişin di navê mêrgan
Evi nevêli û gêze giya
Wan tuxmêt giya li binya keviyan
Wan nêrgiz û sinbil û hilalan
Sorgul û esmin û binefşan
Nesrin û gule nixin û gulzêr
Sosina şere li gel bûkinan
Tu sipêdê ta dibite êvar
Here bigerhe bi xwe li şêran
Min hene hezar bira û pismam
Ev pêkve weki piling û şêran
Pêkve dibin xulam ji bo te
Hemi dibine ji bo te qurban
Dibêjin gote wi Ribadê Gêman
Got: weye çiya dikey diferman
Belê ev bereştşkêt cihê min
Xweştir in gelek ji giyayê xozan
Bin gûngil û tevriyêt Gêmanê
Ez nadem bi hemi Şam û Wanan.
Pirejineka ji welatê min bit
Çêtir e ji hemû kijêt li Gurcan
Her ber li cihê xwe yê bi seng e
Ev metel ji mêj hati vegêran
Lewra ez tiraşekê ji Gêman
Nadem ne bi Wan û Başkalan.

Amêdiyê: 5—7—1942 MELA ENWER

## PIRA GENDERÊ Û HEMÛŞÊ KULIK

Di nîvroyê Meletiye û qeza Gextê da bi navê Hilofê çiyak heye. Çemên Gextê û Genderê di rohelatê wî da dikevin ser hev. Berî têkilbûna herdu çeman, di wexta Romaniyan da, li ser çemê Genderê, bi navê çêm, pirek hatiye çêkirin ko îro jî; hemberê wê pirê di welatê kurdan da nîne. Pire di ziquwekî welê teng da hatiye çêkirin ko navbera du çiyan gihahdiye hev. Bi xêra vê pirê mirov bê dijwarî ji çiyayê Hilofê derbazî hêrikên Alikan dibe. Ne ji ber boşiya çêm, bi tenê ji ber bilindiya cih, pire gelekî bilind batiye çêkirin. Bê zêdeyî mirov dikare bêje ko sed mêtir bilindiya pira Genderê heye.

Di serhêl û binhêlên vê pirê ra eşîra Reşiyan cih girtiye. Vê eşîrê diwazde bav, û her bavekî malmezinek heye. Ji van bavan Teşikan û Alikan di dorhêlên pirê û kûntarên çiyê da dimînin. Herçî Ziravik di nîvroyê van herdu bavan da li deştê bi cih bûye, ko Hemûşê Kulik mezinê vî bavî bû.

Berî heştê-nod salî, di navbera Ziravikan û Alikan da şerine dijwar çêbû bûn. Ji ber ko di van şeran da ji her du aliyan mêrine pir hati bûne kuştin, ji bo rakirina tolê pir caran rê li mêrxasên hev dibirîn. Di nav van rê birînan da, sê-çar caran Alikan rê li Hemûşê Kulik axayê Ziravikan birî bû. Lê Hemûşê kulik, mêrê qenc, siwarê rimbaz û şûrhingêv. her carê di van rêbirînan da du-sê mêr ji Alikan dikuşt û bi selametî ji nav neyaran bi derdiket.

Van serdestiyên Hemûşê kulik çawan ko ji alîkî tirsa wî diêxist dilê Alikan ji hêla din agirê hildana tolê jî di dilê wan da zêde dikir. Lê nema Alikan diwêrîn li erdê rast, cihê ko lingê hespan li çargavê bişixule, xwe berdin pêşiya Hemûşê kulik.

Rojekê Alikan bihîsti bûn ko Hemûşê kulik hatiye nava Teşikan û di vegerê da reya wî bi pira Genderê dikeve. Hînga rîsipiyên wan goti bûn ko: « Vêcar emê kari bin tola xwe bistînin. Hemûşê nikare li ser pirê bi siwarî êrîşê bîne peyayên me ». Çima ko ser pirê ne î raste, û di her hêlekê va heya nîvî pêpiling in; di kîjan hêlê va be heya nîvî hevraz û ji nîvî bi şûn da sernişûv e. Ji ber vê dewar gelekî bi dijwarî li ser dimeşin. Alikan dixwest neyarê xwe ê mêrxas Hemûşê kulik di derbendeke holê da zemt bikin.

Li ser vê ramana ban, Alikan bi şev çil peyayên jêhatî şandi bûn ser pirê û ber ve sibê her hêleke pirê bîst peyan xwe di nav lat û zinaran da veşarti bû.

Hemûşê kulik yê ko tirsa neyar di dil da dh ne dî bû, di vegerê da peyayên xwe bi kaiekî lez û giran şandi bûn nav Ziravikê roheratê çemê Gextê û bi tenê vegerî bû mal.

Dema gîha bû nîvê pirê ber çil peyayên Alikan di vir û wê va herdu dergehên pirê jê standi bûn û berê tifingan dirêjê kiri bûnû goti bûn ê:

— Hemû o! vê carê tuyê çi bikî û bi- kû da herî??...

Hemûşê kulik bê raman û tertilîn berê hêsp cda bû çêm:

— Vê carê jî vir da. Teqez ji destketina; neyar çêtir e.

Goti bû û du zengûyên xurt avêti bûn navtenga hêsp, û hêsp jî xwe avêti bû çêm.

Hemûş ewçend siwarekî ecêb bû ko, xwe şaş ne kiri bû. Berî ko bigehê avê bi deh gazan xwe ji ser bêsp hol kiri bû, ko herwekî ji bilindiya deh gazan bikeve nav avê. Hesp mir: lê Hemûş bi vê xurtiya dilê xwe ji destê neyarên xwe bi selameti filitî.

Ferê, ji bo ko nekevin destên neyaran kurdan xwe di cihên holê jî davêtin.

OSMAN SEBRÎ

## MARŞA KEYANÎ

Her bijîn al û key xwendegah û sera
Her bijîn xurt û,kurd ên ji dil ên bira
Hil de zû dest û mil
Pate lêxin ji dil
Vaye key tê sera
Li ser sera, li ser sera.
Bê welat, bê felat em çi ne kurdino
Bê civat bê xebat em çi ne kurdino
Bê xelîc, bê Ferat
Bê cizîr, bê xelat
Bê sera bê kelat
Em çi ne kurdino!
Tîp û kom ko nebin em çi ne bê ewa
Teng û top ko nebin em çi ne bê ewa
Top û kom kewt û gêş
Teng û top bidine pêş
Vaye dijmin revî
Herne wa, herne wa.
Pehlewan ko nebin kengê pêk tên hemî
Xwendevan ko nebin kengê pêk tên hemî
Xortino berne ceng
Rengê Ristem bi deng
Da bijîn xurt û rind
Serbilind em hemî.

Amûdê: 16-11-942 CEGERXWÎN

# ROJÊN DERBASBÛYÎ

Piştî jiyineke sê salan jiyineke tal û şêrîn ez ji Amûdê bi dûr diketim... Çend hevalên min ên fedakar û çend sûxeyên min ên wefakar dora timobîla me girtî bûn.. Yek, du heval xuya ne bûn; Xwedê zane ne ji bê bextî, dihe ko ji diltengiya jihevqetandinê çavên wan bar ne bû bû û ne hatî bûn...

Bi kel û girî min û hevalan destên xwe di hustiwên hev re bir û anîn. Me hevdû dispart Xwedê.. Bi germiyeke wisan me destên hev diguvaşt ko dilên me ji hev re digotin: Emê her û her heval û bira bimînin...

Gava timobîl bi rê ket, bê hemd çend hêsir i çavên min herikîn.. Ji alîkî, ji hevalan bi dûr diketim, ji aliyê din birîna hêta min ez diêşandim; giyanê min dihejiya; min ne zanî hû şa vê birînê ewê çiqas dom bike û ewê çi li êniya min binivîse!

***

Gelek rojên xweş û pir rojên reş min li Amûdê derbas kirin.. Paşiya paşîn ez hûm zelûlê serencameke kirêt.

Gava diçûm dibistanê û vedigeriyam, dêlikek teva du cewrên xwe li ser riya min xuya dibûn û bi min da direyan. Cewrekî gurî bû, ça vekî wî kwîr bû, rîşekê nêvîyê rûyê wî şewitandi bû.. Cewrikê din kurmî bû, mîna bi ne xweşiya firengiyê le i be, gava direya kewtîn û kaz kaza wî, nola kwîsiyê lablabik di berde ma be, bi der diket..

Belê van cewrikan timî dixwestin riya min bibirin.. min jî guh ne dida wan.. ne di hate bîra min ko rojekê hestiyekî bavêjim ber wan û xwe ji wan biparêzim. Rojekê ji nişkave cewrikekî — Xwedê zane ê kwîr bû — ji jpaş ve bi hêta min girt û ez birîn kirim...

Tixtoran ji min re hewa guhastin û cih guherandin berpêş û « Eyndîwer » nîşan kirin.

***

Timobîla me hêdî hedî ji Amûndê bi der ket û paşê lezand; hevalan, hetanî em ji hev wenda bûn destên xwe ji min re kil dikirin.. Timobîl, her ko diçû, xwe diguvaşt.. li aliyê çepê çiyayên Kurdistanê li alî rastê çola Cezîrê û şorezara Erebistanê diherikîn.. xunaveke bê deng hûrik hûrik dibariya. Şifêr digot: Xwedê bike baran boş nebare û em xwe bigihînin Qamişlokê..

Xwedê em ji herî û çiravê parastin, baran ne bariya.. Lê hetanî em gihiştin Qamişlokê xwenavê rûyên me dialast..

Bi lez û bez min xwe gihand cem tixtor.. Birîna min pansiman kir û hinek derman da min. Roja din em gihiştin Dêrikê, li ba hevalekî bûm mêvan, lê hi şev xewnine bi tirs ez vedîciniqandim. Birîna min diêşiya.

Sibehê ez li timobîlekê geriyam, bi dest ne ket, vêcar li ser hespan me berê xwe da « Eyndîwerê ». Piştî du saetan em gihiştin wir.. Ji xortên wir Felahê mele Sadiq û Mihemedê mele Ehmed derketin pêşîya min û bi rûkenî û bi dilgermî destê min guvaştin..

***

Di yekê Adarê de gihiştim « Eyndîwerê ». Herkesî ji min re digot: bextê te baş e, tu di serê Biharê de hatî vir, ji îro pêve Bihar e, Bihara Eyndîwerê mîna Bihara zozanên kurdistanê ye..

Ev fala ko herkesî ji min re vedikir wisan dernekt.. hi hêjmar, mehek û sê rojan, bi şev û bi roj baran bariya. Bi hezar dijwarî min xwe digihand dibistanê.. Snxteyên dibistanê, mîna yên Amûdê, pirê wan kurd bûn. Ji lewra me zû hevdû nas kir û me zû ji hev hez kir..

Qederê mehekê min nikarî bû dora xwe bidî'a, bişev baran.. bi roj baran... êdî canê me bawî bû hû, hundirê me zingar girtî bû.. Birîna min jî hêj dixebitî.. min bawer ne dikir ko ewê kînga rehet bibe..

Piştî mehekê bi şun da, niva, roj bi derket, giya şîn bû, gul û çîçekên rengereng xuya kirin.. min fam kir ko Bihara « Eyndîwerê » Bihareke welatî ye. Li hember: Çiyayê Cûdî, wargehê Nûh pêxember di bin de çemê « Diclê » diherike.. li berê çem « Cizîra Botan » welatê Mem û Zînê xuya dike. Ev her sê bergehên dîrokî di jîyina min de wergerandineke mezin çêkirin û giyanê min bi axa wê derê ve girêdan... Di rojên baranê de, dost û hevalan ji min re digotin: Malava bihna xwe teng meke îro sibe, baran ê bisekine, êdin Bihar e, emê herin « Pira bafet » seyranê, tiwê bibînî çi cihekî xweş e çi cihekî xweş.. Min û hevalan çend seyran çêkirin. Vêcar dora « Pira bafet » bixwe hatî bû. Rojekê, me xwarina xwe bi xwe re bir û em çûn «Pira bafet» pira dîrokî (dibêjin di zemanê Mîr Mehemedê yekdest de ava bûye) Bi rast jî cihekî pir xweş bû. Dicle, di bin lingên me re diherikî.. Birca belek rind xuya dibû.. li ser Cûdî berfa sipî diçirisî..

Hetanî êvarê em li wir man.. Hevalê yekta û rûhşêrîn Mehemedê Melê mîna hergav weke şalûlekî dikiri şeqeşeq Ji dîwana Cizerî perçên dilşewat dibijart û destê xwe bi aheng kil dikir û digot:

# ROVIYÊ KER

Şêrekî pîr nêçîrvan    Girtin derbend û gavan
Nedîşêtin timawir    Ne mirov û cinawir
Tirsand çavê hemiyan    Kes nedihişt wan ciyan
Şêrê me ê sregevaz    Dît rovîkî belengaz
Rabû bange rovî kir    Digot: kuro were virî..
Roviyê bi tirs û xem    Dişewişî dihat cem
Bi sed fên û dused los    Jê ra dikir panciros
Şêr dil bi wî şewitî    Ew jî çîçkî tewitî
Got: ezxulam bûme jar    Nema bi min dibit kar
Şêr gote wî: zor çak e    Li nik min be xem nake
Her roj heye min nêçîr    Dixwin û feqîr
Bila tu jî ji wan bî    Li nik min dergevan bî.
W rojê şêr rê birî    Reya karwên 'dinirî
Çavên rovî li rê man    Hew dît ko tê bazirgan
Şêr dengekî gurmijî    Erd û ezman tev hejî
Got roviyê jar û qels:    Li min binêr ho teres;
Tu çavên min çer dibîn?    Rovî got: wek ar û xwîn.
Lê pûrta min çawa ye?    Wekî sixên pola ye.
Hînga piştî van zirtan    Şêr xwe berda pêş karwan

« Me di dil de heye narek ko disijit seqerê »
« Erzihala ko nivîsî me bi xûna cegerê.. »
Birîna min hêdî hêdî rehet dibû.

***

Êdin wexta girtina Dibistanan hat.. ji alîkî kêvxweş, ji aliyê din dilnexweş bûm. Ezê vegeriyama Şamê, minê hevalên xwe ên li wir û ên li ser rê bidîtana.. Lê destê min ji Eyndîwerê û hevalên Eyndîwerê ne dibû.. Şairekî çiqas rast gotiye: « Gava meriv li cihekî dimîne, bi însan û axa wê dei ê ve bi benên nexuyayî tê girêdan, kînga meriv ji wir diçe, ev benên ha dilê meriv ber bi xwe ve dikişînin û dieşînin... »

Gava ji « Eyndîwerê » derketim mîna roja « Amûdê » qirika min tije giri bû bû..

***

Roj, meh, sal.. çiqas zû derbas dibin. Ev bûn du sal — nê kêm, ne zêde — ji wan cihan, ji wan hevalan bi dûr ketime.. li cihine wisan dimînim ko ne « here » ne « were » dibîsim: guhê min ji vê ahenga piresteşî bê par maye.. li dora xwe dinêrim ji berdêla Cûdî û Diclê leylanine xapînok dibînim.

Hevalekî dewsa Mehemedê melê, ew dewsa vala, tijî bike nîne — Xwedê giyanê wî bihuştîn bike — sûxtê min jî ne Biro û Remo nin ji diyariya wan deran bi tenê tiştek bi min re maye; di hêta min da hêj jehra diranê wî cewrikî dilive. Ew cewrikê bê xwedî, ew cewrikê serberdayî...

Cideyde: 10-11-942    QEDRÎ-CAN

Siyar, peya tertilîn    Hesp û qatir bertilîn
Ji şêr ne çû kês û taw    Kuştin du hespên qelaw
Dewêr reya xwe girt çû    Syar û Peyan dida dû
Hînga rovî hate wir    Zikê xwe jê têr dikir
Şaş bû ji vê tevdirê    Mat ma li vê nêçîrê
Serekî ma li nik şêr    Her roj dixwar du dan têr
Çav bûn fena çavê gur    Di para bû wek sixur
Jê nepixîn teng û daw    Digot: holê dibit raw
Berê vê min nezanî    Çawan dibit mêranî
Ne hewce me rûyê şêr    Ne xwe didim hêla jêr
Şerme kesên bi rûmet    Bixwin nanan bi minet
Ji kêfa van xeyalan    Berê xwe da newalan
Dakete nav geliya    Wê rojê her geriya
Çaterêyek dibirî    Dibû rovîkî gurî
Vezeliye li ber kaş    Gotê: kuro sibe xweş.
Roviyê bi fên û fût    Gurî bû bû qels û rût
Serî hilda çi binêr    Roviyekî zexm û têr
Hatiye pêş, wê gavê    Jê ra dike silavê
Rabû jê ra silav kir    Digot: siba te xweştir
Yê zexim kirê nedikir    Ko destê yê jar bigir
Diniçandê bi çavan    Giran giran da gavan
Roviyê jar bîr dibir    Dema şaret lê dikir
Berê xwe vegerandê    Di para xwe gihandê
Gotê: ev e ez hatim    Çendak e bê xebatim
Ez nêçîrê nikarim    Lê ji te hêvîkar im
Tu hevalekî rind î    Yek pariyan bi min dî.
Roviyê zexm nepixî    Du sê dengan dikuxî
Pir oflaz şor dikirin    Gotinên şêr bîr birin
Digote wî: « zor çak e    Li nik min be xem nake
Her roj heye min nêçîr    Dixwin zîvar û feqîr
Bila tu jî ji wan bî    Li nik min dergevan bî».
Roviyê jar ecêb ma    Ji gotinên kerê hall..
Lê çi bike zîvarî    Her bûye stoxwarî
Digot, hemîn dieşim    Dê derdê vî bikêşim
Wê rojê ew gerîn tev    Heya li wan dibû şev
Yê jar digot: de rabe    Bê dizî me şol nabe
Yê xurt pozê xwe rakir    Digot te mal ava kir
Ma tu zanî ez kî me?    Ne wekî te rovî mel..
Min tirsandin gelek mêr    Bûme piştmêr ji bo şêr
Gelek nema bo sibê    Dê xwe berdim nîvê rê
Karwdnekî bela kim    Mala te pê ava kim.
Yê jar digot: hevalo!    Holê mebêj delalo..
Em nabin piştmêrê şêr    Natirsin ji me tu mêr
Ji xwe meke şivîşkan    Em in dizên mirîşkan.
Roviyê xurt enirî    Hilkişkişî mirmirî
Gotê: kuro hê sebav    Ma te nînin eql û çav
Çawan holê dibêjî    Çavan ji xwe dirêjî
Min navê tu carek din    Bişkênî rûmeta minî...
Li palekê veketin    Heya sibê raketin
Sibê her du bi rê bûn    Ber ve reya karwên çûn
Gihane serhêla rê    Dîtin ev e mîrek tê
Kalekî dest bi dar e    Li kerê xwe siwar e
Roviyê xurt kire qîr    Qulê dikir cîrecîr
Got roviyê jar û qels:    Li min binêr ho teres!

Min çav û pûrtçawan in?.Got: ne wekî yê sanin.
Roviyê xurt pingirî Xiniz xiniz dinirî
Çavên zerik xez dikir. Pişta yê qels gez dikir
Digot: kuro kerê nêr Bo min bibêj pesna şêr.
Yê qels digot: bila be; Lê b'dexwaza min nabe
Di wir da roviyê xurt Berê xwe li mêrik girt
Êriş dikir kol dibûn Dûman li ser hol dibûn
Çû pêş mêrik rawestî Ew jî li ber dawestî
Dema ket ber hikmê dêr Mêrik rabû mîna şêr
Darê xwe girt hilanî Di navçava wî danî
Rovî bi semt lerizî Serê dûvik dihezî
Çavan ji zo avêt der Ev e halê kesê ker
Roviyê jar digot: axî Ma min negot, malkambax
Ji xwe meke şivîşkan Em in dizê mirîşkan
Em rovî ne, nabin şêr Cûhesin qet dibit zêrî..
Lê te ne b'hîst, bi kerî Da der kavil û serî
Piştî ko têr gilî kir Revî xwe da nava kir.

OSMN ASBRÎE

## XANIMEKE CIWAN

Ey xanimekem fermû were hicrê mitala
Da şerhê bikinı ho te evan fikr û xiyala
Destên te bi destem li derê qesrê wizaret
Alem dicivîn refrefe ser tacî miel-la
Em leşkerê kî destî bi ser darî tiving e
Em resmê selam bo te dikî ber meh û sala
Pêçame li ser çerxê direksona teyara
Destê te î nazik ke birim ewcel bala
Ger ser xwe nejîn xanimekim pûçe xeyalin
Bê ceng û edeb marûzekem hîç û betala
Em hucreyekim bo te wekî xwendegeha kurd
Şeb ta bi seher dersî didim eynê miel-la
Ger şubretî dame ke Cegerxwîn û ciwanim
Bûm serwerê kala bi xwe dilgirtiyê nala

Amûde 16-11-42 CEGERXWÎN

---

( Dûmahîka rûpelê 6an )

Gextê, kuntarên çiyayê Bêli ( Çiyayê Nemrûd ). Vê derketina Mirdêsên gawesti di qiracê Qeregêçiyan da çirokek xweş heye. Malir ko wê balibe talê dê binivîsim. Di demên biçûkiya xwe da, min ev çîrok ji devên kal û rîsipiyên eşîrê bihîstî bû; Lê qenc di bîra min da nema bû. Piştî ko ji welêt bi derketim, rasthatinê careke din ji nû va çîroka derketina Mirdêsanê gawestî ji qiracê Qeregêçiyan bi ser û berên wê va ji min ra da zanîn. Ji bo xweşiya wê, dê berpêyî xwendevanên xwe bikim.

*
* *

Di sala 1930 î da, dîsa jî ber hin tevger min rûyê xwe ji hikûmetê bada û çûme nav eşîra erebê. Iniz, mala mîrê wan Miçhim kurê Mihêd. Hingê rehme-lê Evdilqadirê kurê Dirî î jî li ber tirkan bazda bû û hati bû nik Miçhîm. Dirêjiya rojê di bin siha konan da em bê kar û xebat bûn. Rojekê Evdilqêdir gote min:

— Piştî du rojan me dil heye em xezî bibin. Heke te dil heye hevaliya me bikî, em dê bi hev ra herin.

Piştî dan û standineke biçûk gotinên me Çû bûn serhev, min jî xwe ji çûyina wê xeziyê ra kar dikir. Roja siseya em çil siwar bi awakî nijdevanî di rex hev ra li sînorê tirkan raperîn û me berê, xwe dabû nîveka welêt. Serêvarê em raste keriyek xezal hatin û me da pey wan. Piştî teqegurteke kurt em li hev civîn, bi tenê du xezal hati bûn kuştin. Belbî ev cara pêşin bû ko yekî wekî min î çiyayî dikir li erdê beriyê goştê xezalan li ser kozên gewrîgê bibirêje. A rast ez bi qasî zarokekî biçûk bi vê xwarinê dilxweş dibûm. Hîn me berê xwe li rê rast nekiri bû ko min ji Evdilqêdir pirsî:

— Pismam em dê goştê xezalan kînga û li kû bixwin?

— Piştî saeteke din û li ser xirbê we Mirdêsan. Çima ko li wir av di sarîncan da tête dîtin.

Evdilqadir, begekî nexwanda; lê gelekî jîr û serwext bû. Çiqas çîrokên dîrokî bihîstî bûn; hemî bi kar û mak dizanîn. Ji xwe di rê û rêzanên eşîran da şarezayekî welê di nav eşîran da kêm kêm peyda dibûn. Hîn ko kês hat bû, ji xwe derbas kirin ne karê êqil bû. Min jê pirsî, he ka derheqê vê çîroka ko min biçûkî bihîstî da çi dizane. Camêr çîrok bi ser û berên wê ve ji min ra holê got:

« Teqez te niha ji devên kal û rîsipiyên malbat û eşîrê bihistiye. Piştî ko koçerên mirdêsan berê xwe dane zozanan, gayên we li vir westiyan e û di qûna vî qiracî da bi cih bûne. Ên we yên ganewestî ko Têrikan in xwe dane pişta DiyarBekirê. Ji xwe birê we yê ko çûne Heymanê, Mirdêsê Evdil-Îley, tu ji mi çêtir dizanî ».

Tevî ko min çîrok berê jî bihîstî bû, min dixwest carekê jî ji devê Evdilqêdir bibihîsim. Min jê pirsî:

— Gelo sebebê çûyîna Mirdêsanê gawestî ko va erda berdane û çûne çiyê jî dizanî?

— Çawan nizanim. Lê te dil heye ko bêbextiya Qereqêçiyan ji devê min bibihîsî; dîsa jî xem nake dê bêjim. Ma ne me zora we biriye: dixwaze bila bi bebextî be.

Rebmetî bi kenê xweyê nas vegûrizî û got:

« Piştî ko Mirdêsê gawestiyayî bi Têrikan va ji hev qetin, hon ê gawestî di qûna vî qiracî da bi cih bû bûn, û we ev xirbê ko bi

**Mirdêsan bi nav bûye, ava kiri bû. Lê vê yeka han demekî dirêj dom ne kir. Sê-çar sal bi** ser da ne çûn ko di navbera Qeregêçîyan û Mirdêsanê gawestî da şerekî pirî dijwar çê bû. Ji her du aliyan bi dehan mêrxas û egîd hatibûn kuştin. Van her du eşîran nema dikari bûn di erdekî da rûniştana. Hikûmet û hin eşîrên dorê ketibûn navberê. Dawî qerar dabûn ko herçî eşîra ko mêrên wê gelek hatine kuştin dê bimîne û ya din wê li wî erdî barke. Li ser vê qerarê, Qeraregêçiyan bi şev cendekên kuştiyên we Mirdêsan di gorên wan da bi derxisti bûn û seyên kuştî êxisti bûn şûna wan, û cendekên Mirdêsan di nav ên xwe da raveyî hikûmetê kiri bûn. Gava hikûmetê goristanên herdu eşîran vekirin, di a Qeregêçiyan da 20-30 kuştî, û di a Mirdêsan da deh seyên kuştî dîti bûn. Hînga hikûmetê pê da bû pişta Mirdêsan û di qirêc da bi derxisti bûn û wan jî berê xwe da bû çiyayê Bêli, cihê ko îro jê ra Mirdêsan tête gotin ».

Bi kutabûna çîroka Evdilqadir ra me xwe gîhandi bû ber pagên xirbê Mirdêsan. Herçî ji me peya dibûn, doxhefsarê mihînê davêtine zendê û ji bo birajtina goştê xezalan tûpên gewrîgê dicivandin.

*
* *

Eşîrên ko bi navê Mirdês têne xwendin di sê cihan da rûdinin. Cihê yekê, Mirdêsê Evdil-Ĥey di deşta Heymanê da, ko tevayiya wan deh gundin. Cihê didowan, Mirdêsê Gawestî di nîvroyê Meletiyê û qeza Gextê da, ko tevayiya wan nîzîka sed gundî ye. Cihê siseyan, Mirdêsê Têrikan in, ko tevayiya wan digehê dora dused gund.

Ji van pêva jî li welatê Serhedê ( Qere kilîsê ) bi navên Osman komî; Şe'bo û Bazarcixê sê gundên Mirdêsan hene ko, berî sed salî li welatê Heymanê ji Mirdêsê Evdil-Ĥey veqetîn e. Îro ji emareta Mirdês a mezin bi tenê ev her sê eşîr û her sê gund wî navî diparêzin.

Herçî bêjeya gawestî, herwekî jê dixewine ji koçerên ko bi semet qelsiya ga û barbirên xwe ji êl û eşîrê bi şûnda mane ra hatiye gotin. Ji xwe heya îro jî barbir û erebekeşên xelkê Serhedê hîn ga û madegin. Heye ko hin bavên hin eşîran ji ber hin sebebên din, ji êl û eşîra xwe qetîbin an bi şûnda mabin, dîsa jî bi navê gawestî hatibin navandin.

OSMAN SEBRÎ

## LE MARIAGE CHEZ LES KURDES

Comme partout en Orient, le célibat constitue au Kurdistan un état anormal. On se marie très jeune: les garçons, à partir de 15 ou 16 ans; les filles, dès 12 ans. Chacun a autant de femmes que ses moyens le lui permettent. Charaf Khân, qui écrivait au XVII° siècle nous dit que la plupart de ses compatriotes prenaient quatre épouses et que les plus riches entretenaient encore un nombre égal de concubines ( Charafnâme p. 33 ). De nos jours, les gens du peuple se contentent généralement de deux femmes; seuls les chefs en ont quatre, comme le permet l'Islam. L'exemple récent du fameux Simko et de ses 14 épouses ne peut être considéré que comme tout à fait exceptionnel. Il est de règle de se remarier lorsque la première femme est stérile: si pareille mécompte arrive à un agha les vassaux se cotisent pour lui permettre de choisir une seconde épouse.

Les conjoints doivent être de naissance égale ( hinkûfên hev ) et les familles nobles prennent soin d'éviter toute mésalliance. Il y a peu de temps encore les représentants de l'ancienne aristocratie déchue se refusaient, même appauvris et menant une existence obscure au pied de leurs citadelles en ruines, à donner leurs filles aux grands propriétaires terriens qui formaient la nouvelle classe dirigeante, créée et soutenue par le gouvernement ottoman. Le même préjugé existait chez les nomades à l'encontre des sédentaires. Enfin la loi yezidie, qui interdit tout mélange entre les différentes castes des « chaykh, » des « pir » et des « murid » a transfomé en prescription religieuse cette exigence de la coutume. Chez les Kurdes musulmans, les chansons populaires se font souvent l'écho du désespoir de jeunes filles contraintes par leurs parents à des unions indignes d'elles.

Il va sans dire que les bouleversements sociaux qui ont suivi la révolte de 1925 et sa répréssion ont considérablement atténué la rigueur de ces conceptions.

Dans les classes populaires, les époux appartiennent d'ordinaire à la même tribu souvent au même village et à la même famille, seules, les maisons de chefs ou de notables pratiquent le mariage intertribal. Les alliances contractées servent alors, soit à renforcer une entente politique, soit à sceller une réconciliation. Il arrive en effet, mais assez rarement;

que, pour mettre fin à une vendetta, les proches du meurtrier accordent gratuitement la main d'une de leurs filles à l'un des parents de la victime.

Suivant la coutume kurde, le cousin germain possède des droits sur la main de sa cousine; il doit être préféré à tout autre prétendant, et ce n'est que s'il renonce expressément à ellé que la jeune fille peut épouser un étranger ou un autre membre de la famille. Toute infraction à cette règle risque de provoquer de graves conflits: rapts meurtres ou guerres.

Des lois et des préjugés aussi rigides s'opposent souvent aux désirs des jeunes gens, et font que les enlèvements sont chose fréquente au Kurdistan. Les amoureux dont la passion est contrariée se mettent d'acord pour réaliser leurs voeux malgré la mauvaise volonté des leurs; comme l'opposition rencontrée vient généralement du père de la jeune fille ils vont se réfugier soit chez le jeune homme si la famille de ce dernier est assez puissante pour faire respecter son cboix, soit chez un chef voisin qui sera tenu par les devoirs de l'hospitalité de prendre les fugitifs sous sa protection, et qui tâchera d'arranger les choses à l'amiable. Cependant, comme le rapt entraîne le déshonneur de tous les proches de la belle, ceux-ci acceptent rarement l'idée d'un compromis; ils cherchent à se venger, soutenus par leur clan. Un premier meurtre en cause inévitablement un second: la plupart des inimitiés séculaires qui font s'affronter les tribus n'ont pas d'autre origine.

Signalons, pour terminer cette introduction, que la répudiation, bien que permise par l'Islam, n'est pas entrée dans les moeurs kurdes. Presque partout, on la considère comme une pratique honteuse. Un mari qui se sépare de sa femme se couvre de ridicule; il n'a plus d'autre ressource que de quitter son village ou son clan.

***

Fiançailles et mariage comportaient jadis des usages fort compliqués dont beaucoup sont tombés en désuétude. Nous tâcherons de décrire aussi complètement que possible ceux qui subsistent encore, ou dont le souvenir est parvenu jusqu'à nous.

Les travaux en plein air, chez les sédentaires, la vie des camps chez les nomades, les fêtes et les danses font que, non seulement il n'existe aucune séparation sociale rigide entre garçons et filles, mais qu'il leur est facile de se rencontrer chaque fois qu'ils le veulent. Amourettes, rendez-vous clandestins forment le principal thème des chansons populaires.

Pourtant, malgré la liberté dont ils jouissent, les jeunes gens n'ont pas la faculté d'exprimer ouvertement leurs préférences, au moment des fiançailles. C'est le père, assisté d'un conseil de famille, qui choisit sa future bru. Le fils n'est pas présent à la réunion, mais on le consulte parfois indirectement; pourtant s'il a déjà contracté un premier mariage, il peut faire connaître sa volonté, ou même demander qu'on lui donne une seconde épouse.

RÛDÎNÎ.

Lorsqu'une famille jette son dévolu sur une jeune fille qu'elle ne connait guère, soit qu'elle n'appartienne pas à la même tribu, soit qu'elle habite un village éloigné, elle délègue une ou deux femmes (rûdî), qui vont s'installer pour quelques jours chez les parents de la belle: elles observent discrètement ses manières, étudient ses qualités et ses défauts. Une fois satisfaites, elles s'en retournent, mais sans dévoiler le but de leur voyage.

HERE KIRIN. (accordailles).

Si elles remportent une impression favorable de ce premier contact, on charge un intermédiaire de sonder les intentions de la famille et de s'assurer qu'elle ne rejettera pas une demande éventuelle. Alors, le père ou le frère aîné du prétendant, ou encore un notable ami, se présente à son tour chez la future fiancée. Il offre soit une arme, soit un cheval, dont le prix sera déduit du « qelen ». L'acceptation de ce cadeau constitue un accord tacite. Le dicton déclare: « herê kirin nîvê mehrê ye » (les accordailles sont la moitié du mariage).

XWEZGÎN OU ŞÊRANÎ (demande en mariage, ou cérémonie des sucreries).

A quelque temps de là, au cours d'une seconde visite, qui doit avoir lieu de nuit, le père ou le frère aîné du jeune homme, accompagné pour la circonstance de quelques parents, présente officiellement la demande en mariage. Il offre des rasins secs et des sucreries qu'il a apportés (d'où le nom de la cérémonie: « şêranî » douceurs) puis, après quelques moments de conversation, il fait comprendre ses intentions La formule consacrée est la suivante; «Me divê tu barê me li me kî» (Nous voudrions que tu nous charges de notre fardeau) ou encore: « Me divê tu li me kirasekî bibirî » (Nous voudrions que tu coupes une chemise à notre taille). On répond: « Li ber qebelê we ye » (cela dépend de vous). Le demandeur

# DÎWANA MELÊ

— 40 —

Aşiq er carek ji balayê bidit berqa mecaz
Dê li nik sahib dilan heta ebed bit serfiraz
Keşf û esrarê sifetan bê mihebet nabitin
Sûretê esma divêtin da bikin jê fehmê raz
Samia husni cemalê dê ji ilmê bête eyin
Eşq da jê hilbitin kê di heqiqet bê mecaz
Husn û hub bê yek-du nabin dê bikin şah û geda
Nûrê nadit şu'leya mehmûd û bê sem'a ayaz
Me'neya eşqê dizani ayeta husnê bixwin,
Da tu herfên mehbetê yek yek ji hev ki imtiyaz
Aşiqan bê gav lew kalin ji dil tên şubhê re'd
Wan ji balayê dibarin wek birûskan remz û naz
Ki xeber dit dê ji eşqê û ji ber usta girit
Gerçi ew rahê diraze sîne sûz û cangudaz
Aferin sed aferin hê, min ji wan ra aferin
Ey ji tirên dilberan daim di dil peykan û gaz
Guh bide awaz û ney weqtê sema tên muxpeçe
Fehmê razi ger diki çawan dinalin çeng û saz
Ew dilê min wek kebûter nabitin kes lewme kit
Lew di vê torê we da kefti me ditin sed şehbaz
Wer dilo da çin temaşaya ciwananê çimen
Wi hilati ser bi naz û sayeban danin niyaz
Zilf û sinbil, mişk bûy û bisk sosin surşirin
Ser û bala sebzepûş û gul nisan û xuncebaz
Nêrgizên qamet di zimrûd sergiran hatin xeram
Çar etrafan bi ref ref lê bi meş tên siy û qaz
Dil be ki dem ez ji wan her yek bi nazan dil dibim
Dilribayên canfezayê dilberin aşiq gudaz
Eqd û ihramê dema dilber xweyibi ferzi eyn
Secdeyek ber wan du birhan nagirit cih sed nemaz
Îde û mirê me iro dergehê litfê vekir
Go mela: hingi bixwazi dê bidim bes tu bixwaz

— 41 —

Ji re'na nêrgizê tey mest û xwinıiz
Zeman bû ehdi ceng-engiz û Cengiz
Te canê min divêt ey canê alem
Ji min bistin bi le'lên xwey şeker-rêz
Du ember bûn li şimşadê vebesti
Lê bestin lew hewa bû enberamiz
Ji axa esilanê meskenê bûn
Lê daxan da bibini xweş sebatêz
Tenê Ferhad dizanit lezetê eşqê
Ko wi can daye Şirinê, ne Perwêz
Pêt û tabê hezar eşkence da dil
Ji Şirazê nigabê mest Tebrêz
Îlahi nêrgiza meymest û nazik
Ji destê xwar û bedxwahan biparêz
Ko lê têt ew qebaya asimani
Letif û şeng û nazik wek belaliz

## PÊŞ KEVIN

— Barê giran li ser milê xortan e —

Xortino werin em bi pişt û mil
Bo welat xebat em bikin ji dil.
Serxwebûn divê bo me ber demê
Pêş kevin hemi, pêş kevin hemi.
Bo me her divê yekti û meji
Her biji welat, her biji biji.
Serxwebûn divê bo me her demê
Pêş kevin hemi, pêş kevin hemi.
Em bi nav û deng, her bikin xebat
Serbilind hemi em biçin welat.
Serxwebûn divê bo me her demê
Pêş kevin hemi, pêş kevin hemi.
Min divê welat, min divê serek
Serbilind bijin, em hemi gerek.
Sexwebûn divê bo me her demê;
Pêş kevin hemi pêş kevin hemi.
Xortno em hemi ceger bi xwin in,
Yan mirin divê yan bilind bijin.
Serxwebûn divê bo me ber demê
Pêş kevin hemi, pêş kevin hemi.

CEGERXWÎN

---

JI BÎRÊN ROJÊN KEVIN

## CEJNEPÎROZIYA WELATO

Dizanim cejne hat iro heval û hogirên te gişk
Direvin himbêza bavan nola berxan û makan pişk
Bi vê va hevde cejnên me kuta bûn holê dûri hev
Ko bextê reş weka termê rojên me kirine tarişev
Te iro ne dê ye ne bav hemi biyan stoxwari
Tu bê qey ev ne bes bûn ko bû mivanê te zivar i
Di ber ali va dilteng î birinên te bê derman in
Ji bir meke di rojên teng mêranî zirt û halan in.
Tu lawê miletê kurd î, ji bo te rojeke şayî
Heye di çerxa dinyayê wê gav ewr ê bibin sayî
Mezin be da ko wê rojê ez û tu gurmikan b'hevdin
Bi pozên çapliyên devreş newal û deviyan tev din
Neyaran bikujin bê van bi carê tovê wan rakin
Welatê ko xopan bûye ji nû va şên û ava kin
Di xarin aleke rengîn di nav gorna bavê min
Dê hingê bêjim cejna te piroz be li ser çavê min.

Hema 16-1-934 OSMAN SEBRÎ

---

Sewaşek rête, disa alemê dil
Bi cadûyê du çeşmê fitne-engiz
Xebals teb'e cahil seksuruşt e
Yeqin ew ker ji canan lew diket bêz
Mela canê te çawan peblewan ker
Li tayên xumriyan zilfên dilawêz
Ji husna bê nişan nadi nişanek
Nişani ger ji dil ne gira bi perhêz
Mebin`ger ev bi suret ademine
Hemi darin ji agir ra kiri rêz

# JI WAN RE

## KO KETINE RENGÊ BIYANIYAN

Perîcar hin ji me an ne ji me lê tev de kêtine kiras û rengê biyaniyan, li civatan bi me re rûdinin guft û go û doza xelkê dikin.

Herçendî em bersefa wan didin jî ew hingê tek û tena ne. Ji bo pêşteva her kesî, divêt em di Hawarê de bersefa wan bidin.

Belê em dikarin pesinê nijadê kurd bi awayê zanistî û dîrokî bersefa her çavnebarî bidin. Ew jî nikarin bidine mandelê « inkar ». Ji ber ko ev gotin rast û dirist in.

Gava xelkê goştê kulî û gumgumokan dixwar, me gotşê pezkoviyan dixwar. Dîsa gava ew di bin konê reş de mezin dibûn em di koşk û seran de li ser mehfûr û xalîçan rûdinişîn. Qesirên me ên hendesekarî hebûn. Herwekî ji beden û awahiyên me ên kevnare dixuyin.

Heyama ko xelkê pût û senem ji xwe re dikir armanc; dîsa me xudanê şev û rojan dinasî. Di destpêka Islamiyê de direfşa Mihemd dîsa me hilda jor. Ji xwe cenabê pêxember ne goti bû ko heke ilim herç bigîje pêwirê, dîsa lawên îran wê destê xwe biginin-ê.

Di awayê şer de lawên kurd dîsa xûnrêjên cihanê ne. Ne bi tenê text û kevelê osmanlî, lê yê herkesî dîsa kurdan berz kiriye.

Belê em dikarin bibêjin kesê ko nanê kurd bixwe û li erdê wan bisekine divêt li me çep nezivire. Divêt ew zanî bin ko rojên reş û teng di pêşiya wan de hene û kes nikare wan wê rojê biparêze. Roja ko perengê dojeha dilên xortên kurd wan û yên ji wan meztir jî dê bibirêje.

Belê ji bîrbir re divêt nehêle ko dergehê tobê bête girtin û ew bikevin ber setma ayê kurd. Hêvî dibe ko ev belgihbiyanî navên xwe bi xetê reş di diroka me de xêz nekin.

Herkes ji me riya xwe dizanê. Herwekî gotiye: Qencîkiro bi xwe kiro, xirabkiro bi xwe kiro.

YEHYAYÊ SEYDA

Amûde: 15/5/1943

---

JI BÎRÊN ROJÊN KEVIN

## SERSALA MIN

« JI QEDRÎ CAN RA »

Îsal sala me qut hû
Sî'w sisê bûne sî'w çar,
Bi ax û wax û kûfîn
Û diltengî bû êvar.
Bi dilekî şikestî
Min deftera xwe anî,
Tevî qelem divitê
Li pêşberê xwe danî.
Û çûme bazara dil
Da tiştekî bibhîsim,
Rûpelekî defterê
Reş bikim binivîsim.
Darên di geliyê dil
Ji rûkî hû bûn hîlor,
Ji newalên di nav da
Diherikîn xwîna sor.
Ne man tu deşt û banî
Qe tiştekî qenc ne dit,
Li hin darek hîlorê
Welatoyê biçûk dît.
Ew jî bi hesreta dê
Dikizî û dikelî;
Di nav àrê biyanê
Li ser piştê vezelî...
Min got: Welato rabe
Kijîn jî bo me şerm e!
Digot: bavo tu n'zanî
Xwîna diyan çi germ e.
Min heşt salan tu ne dî
Hinde li min kar ne kir,
Van du salên ji bo dê
Ji wan heştan zêde kir.
Bi ser vê yeka han da
Wek terma reş zivarî,
Ket ewrekî malkambax
Bi ser min da dibarî.
Mafir ji bo welêt in
Divê ez wan bikêşim,
Ne herwekî hevalan
Hîn zêdetir biêşim..
Berê bêhna xwe ragirt
Paşê kûfîn bi ser ket,
Pêlek dûyî tûj û tehl
Ji bêvilê bi der ket.
Di wir da min hilanî
Qelemoka hesinî
Ev giloka ji derdan
Li destê xwe dizinî.
Bi dilekî pir şewat
Min berê xwe da ezmên,
Ev çend bêjeyên jêrîn
Berpê kirin bo Yezdên:
« Yezdan te qet ne da vî
Biçûkî bêhneke xweş;
Ji roja te afirand
Holê timî bextereşî
Wî şeş salan ne dît bav
Du salan ne bav û dê;
Dirêjiya heşt salan
Wilo maye çav li rê.
Piringekî maziyê
Hinavê wî disoje,
Veqetîneke bi dûm
Nîveka dil diroje.
Yekcaran bêhn geş dibe;
Lê bi hezrîng û keser
Gava dayikê nabîn
Dîsa serî dikev ber..
Bi navê te ev tîra
Zirava min dibire,
Ma ji bo çêlîkî wa
Ev dijwarî ne pir e?!... »
Vê hêreya bi şewat
Ji jinê bêzar kirin,
Du hêştirên kezebxur
Di wir da hişyar kirim
Lanet li te be salê,
Min ji te ne dît xweşî!
Diwazde mehên te holê
Derbaz kirin bi reşî.
Bi vê va neh lanet in
Ji neh salan dixwînim,
Di sersala dehan da
Ka çi xewnê dibînim...

Hema 31/12/1933

OSMAN SEBRÎ

# MELA EHMED

Şairek ji Heyderan e, di mihaciriya xwe de hati bû qeza Nisêbînê. Ji ber ko evîna welat û milet di dilê wî de şax da bû, êşek lê peyda bû bû û di vê nesaxiya xwe de dîwanek ji şi'ran û qesîdan çêkiriye; heye qederê (300-400) rûpelî. Niho jî ew dîwan bi xetê wî ê dest li cem kurê wî ye; navê wî M. Emîn e.

Ew jî li nahiya Amûdê li gundê (Xalit) dersên şerîetê dixwîne. Ji ber ko di stûna klasîkan an şairan de navê wî min ne dît, û mîr jî dibêje van veşartiyên wiha divê hon ji min re bidin nas kirin; lewra me îro dest pê kir û wan peşkêşî mîrê mezin dikim ezbenî. Eve yek ji qesîdeyên wî:

Ela ya ey-yûhes-saqî ji zatê te recakar im
Werîn camek meya safî ji hicrê mest û guzar im
Melûl im bê qeder saqî mifer-reh bim bi camê ra
Mirada min ji destê te badeya sor û gulgon e
Belê wextê seher îro xiyala firqetê xwarim
Xerîb im pir keder saqî binûşim ez bi fecrê ra
Binûşim badeya safî ji bê hoşî wekî rabim
Xewasê qelzema eşq im ji yaqûta xebardar im
We lîken bê xeber saqî mişew-weş him bi [ derbê ra
Xewasê qelzema kûr im di behran da me dî [ dur-rek
Nehin min taqeta weslê ji kerba dil birîndar im
Belê şam û seher saqî bi feryad im ji şewqê ra
Ji eşqê mest û sekran im ji hinga elest im ez
Me noşi badeya mey lê heta îro weha jar im
Hezîn im rengê zer saqî ji van tîr di cergê da
Dil û cergê min bû ateş ji şewqa mah û sîmayî
Disojim mislî perwanê cenahê cemê dîdar im
Vejandim ser teser saqî berê sal da tu mahê ra
Ji cergê min dibarin tîr ji qewsê ferq û hicran e
Meraqa wesletê kuştim ji ser ta pê wekî nar im
Xideng û mawezer saqî li min têtin ji qetlê ra
Ji fikra sûreta gulgon di behrê xem ne hatim ez
Wekî bilbil bi efxan im meh û salan dilingar im
Eman ey leb şeker saqî ne ma taqet ji sebrê ra
Wekî bilbil bi xemdarî gulistan min li bîr in her
Peya-pey xem dibarin dane dane zubdeyê ek- [ dar im
We fehmî qed neşer saqî telef can û mal vê ra
Ji hicara vê demê dîn im li kû pîrê-mexan kanî
Bipirsim hal û esraran çi reş eşqê bi dildar im
Bibînim ez eger saqî didim rûh ez bi mejdê ra
Ji derbê firqetê Ehmed dinalit mislê kerbînî
Ji destê mehbet û eşqê muqîmê eşkê xunbar im
Derîn rux ey qemer-saqî peyala heyderî jê ra.

Şandox: SELÎM. Ş. M. HISÊNÎ

# BINGEHÊN

## GRAMÊRA KURDMANCÎ

— 22 —

148 — NÎV. Gava ev jmarnav bi serê xwe ye û bi tiştekî din ve ne girêdayî ye bi «î» yê tête dewandin: nîvî bide min, nîvekî bide min, bi nîvî bike.

Lê heke jmarnaveke din an navdêrek bi nîvî ve bûye hingê «nîv» li goreyî tewanga wan tête tewandin û ji ber ko hikim li wan nake her navdêr bi tewanga xwe a xweser ditewe.

Ji yek û nîvê (nîvan) bêtir.
Ji çar û nivan bêtir.
Ji çil û nîvî bêtir.
Nîv zebeşî (zebeşekî) bide min.
Nîv sêvê (sêvekê) bide min.
Bîst û nîv zeheşî (zeheşekî) bide min.
Bîst zebeş û nîvan bide min.
Bîst û nîv sêvê (sêvekê) bide min.
Bîst sêv û nîvan bide min.
Zebeş û nîvî (nîvekî) bide min.
Sêv û nîvê (nîvekê) bide min.
Min ev hesp bi bîst zêr û nîvekî kirî.
Min ev hesp bi bist zêr û nîvan kirî.
Min ev hesp bi çel zêr û nîvî kirî
Bi goştê nîv bizinê em têr nabin.

149 — YEK. Ev jmarnava ha bi «ê» yê tête tewandin: Ji yekê, bîst û yekê, çel û yekê, sed û yekê, hezar û yekê, mîlyon û yekê...

Lê gava «yek» dikeve pêşiya navdêrekê lê hikim nake û zayendê xwe nadiyê. Ji lewre navdêr li goreyi tewanga xwe ditewe: Ji yek hespî, yek mehînê, bîst û yek zebeşî (bîst û zebeşekî) bîst û yek sêvê (bîst û sêvekê).

Çend misalên din: Min ji hezar û yekê bêtir hesp hene. Ez sed û yek bespî û hezar û yek çêlekê dibînim. Ji bîst û yekê heta sê sed û yekê bijmêrîne. Min ev hesp bi çil û yek zêrî (bi çil û zêrekî) kirî. Min bîst beranên xwe bi sih û yek bizinê (bi sih û bizinekê) guhart. Birayê min ev xanî bi sed û zêrekî (bi sed û yek zêrî) firot.

150 — Jmarnavên dido, sisê, çar, pênc, şeş, heft, heşt, neh, deh, yanzdeh, dwanzdeh, sêzdeh, çardeh, panzdeh, şanzdeh, bevdeh, hejdeh, nozdeh, bîst, bi «an» ê têne tewandin: Ji çaran, heştan, dehan, bîstan, bîst û pêncan, sed û nehan, sê sed û heftan, hezar û şanzdehan, bezar û çil û siseyan..... bêtir.

Ev jmarnavên ha tewangên xwe didin navdêrên xwe û wan jî wek xwe ditewînin: Bi şeş zêran, ji heft bizinan, di nav hevdeh keçikan de, bi çel û heşt eskeran ve, ji du sed û nozdeh çêlekan, ji hezar û heştê û çar hespan.

## MEMOZÎNA

### EHMEDÊ XANÎ

— 11 —

DESTANA BEYANA NEWRÛZA SILTANÎ, TESMIYE MEWSIMI SIRÛR Û ŞADIMANÎ BI MERSÛMÊ QEDÎMI KURDISTANÊ KO WAN DIGOTE SERSAL Û ED DIKIRIN BI ÎDI WISAL

Xel-laqî cihan ji feyzi fitret
Hey'ati felek bi wechi qudret
Bê qalib û bê mihît û miqyas
Bê alet û bê mişîr û meqras
Evçende miez-zem û midew-wer
Evrenge misen-neh û miker-rer
Înane bi mareza wicûdê
Kêşane bi menzera şihûdê
Hikmet ew e, ev hemî li kar in
Hindek di peya û bin siwar in
Hindek di betî û hin serî in
Hindek di muîn û hin menî in
Hin midbir in û hinek mideb-bir
Hin miqbil in û hinek miqed-dir
Hin katib in û hinek di istad
Hin mitrib in û hînek di cel-lad
Hin rojperest in û hin şebefrûz
Hin xus-serevîn û hin xemendûz
Hindek di misali Zîn zerî ne
Hin şibhi Memî di mişterî ne
Bilcimle miseyqel û minîr in
Hin padişeh in, hinek wezîr in
Hindek ji teber-rika tebîî
Ew têne bi niqteya rebîî
Tecdîd dikin ji bo me salê
Gava weko têne îtidalê
Danayi miem-meri kuhensal
Evrengehe go ji bo me ehwal
Got adeti pêşî û zemanan
Ev bû li hemî cih û mekanan
Wextê weko şehsiwari xawer
Tehwîl dikir di mahi Azer
Yanî ko dihate birci sersal
Qet kes ne dima di mesken û mal
Bilcimle diçûne der ji malan
Heta digehişte pîr û kalan
Roja ko dibûye îdi newrûz
Tazîm ji bo dema dilefrûz
Sehra û çemen dikirne mesken
Bêda û demen dikirne gulşen
Xesma ezeb û keçên di bakir
Elqis-se cewahirên di nadir
Têk da di mizey-yen û mileb-bes
Vêk ra li tefer-ricê mirex-xes
Liken ne bi tihmet û bi min-net
Belkî bi terîqi şerh û sin-net
Lewre ko ewan xerez ji geştê
Meqsûd ji çûyina bi deştê
Ew bû ko çi talib û çi metlûb
Yanî du teref mihib û mehbûb
Ev her du celeb ko hev bibînin
Kufwê di xwe ew ji bo xwe binin.

— 12 —

BIDERKETINA ŞEHRIYAN E BI DEŞTÊ JI BO SEYRANA SERSAL Û GEŞTÊ

Dewra felekê ji bexti fêrûz
Dîsan ko nima ji nû ve newrûz
Mebnî li wê adetê mibarek
Şehrî û sipahiyan bi carek
Bajar û kelat û xanî berdan
Teşbîh bi nijdiyan û cerdan
Sef sef dimeşîne kûb û deştan
Ref ref dixweşîne seyr û geştan
Esnaffimem sixar û kub-bar
Qetha ve ne ma di şehri dey-yar
Hindek bi peyarî çûne baxan
Hindek bi siwarî çûne raxan
Hindek bi tebayî û bi kesret
Hindek bi hevalî û bi wehdet
Rabûne ve xanim û xewatîn
Wan ji tiji gul kirin besatîn
Hûran kire meskenê xwe cen-net
Bê perde û bê melal û min-net
Dûşize û duxter û rewalan
Pakize izar û zilf û xalan
Etrab û kewaibê di ezra
Merdan û mirahiqê di zîba
Eshabi qimaş litfi rixsar
Erbabi metah hisni dîdar
Wan lêk dikirin metah yek erz
Texmîn dikirin bi tûl û w'elerz
Sewdakeri eşq bûn di bazar
Hem bayii hisn û hem xerîdar
Sersalî û bakir û rewalan
Sedsalî ciwan û pîr û kalan
Sersal li resm û rahî mahûd
Gêran diçû meqami mehmûd.

— 13 —

MIREXES BÛNA WIŞAQAN BI GULGEŞTA SERSALÊ REXBETKIRA WAN E BI BAZARA HISIN Û CEMALÊ

Qendîli minîr dêri ezreq
Mişkati hemil kirin mirew-weq
Sersal ko bû ji nû ve me'mûr
Mir daye gerê di taze destûr
Destûr ko bû ji bo wişaqan
Rabûn hemî şibheti işaqan
Têk çûne bi mareza mezadê
Dildadeyî meqsed û miradê
Il-la bi tenê Memo û Tacdîn
Wan dane xwe dixterane tezyîn
Yanî di dema ko bûye tehwîl
Ew her du bira di came tebdîl
Istebreq û sindisin di ber da
Çend mehcer û miqrime bi ser da
Kakûl kiri bûne tir-re her sû
Perçem kiri bûne zilf û gêzû
Wan lew kiri bû libas tesrîf
Da qet nebitin li wan çu teklîf
Pûşîde libasi dilberanî
Seyran dikirin bi sergiranî.

---

151 — Jmarnavên sih, çil, pênci, şêst, heftê, heştê, not, sed bi « î » yê têne tewandin: Ji çilî, şêstî, notî, sedî, pênc sedi, neh sedî, sed û çili, hezar û du sedî, heft hezar û heşt sedî, çar milyon û sedî... bêtir.

Ev jmarnavên ha jî tewanga xwe didin navdêrên xwe û wan ji wek xwe ditewînin: Bi sih zêrî, ji çil bizinî, di nav heftê keçikî de, bi not eskerî ve, ji sed û pêncî çêlekî...

152 — HEZAR. Ev jmarnav jî gava bi serê xwe ye bi « î » yê têtê tewandin û hikim li navdêra xwe jî dike.

Ji hezarî, ji yek hezari, ji hezarekî bêtir.

Ez hezar hespî dibînim, ez hezar mehînî dibînim.

Lê gava hezar bi jmarnaveke din ve bûye dikeve bin hikimê wê û li gora tewanga wê hejmarê têtê tewandin: Ji çar hezaran, bîst hezaran, çel hezarî, çel û pênc hezaran, sede hezarî, sed û deh hezaran... bêtir.

Ji milê din jmarnava hezar gava ne bi serê xwe ye û daye pey jmarnaveke din navdêra xwe nema dikare bitewîne. Min ev tişt bi hezar zêrî, çar hezar zêr, çel hezar zêr, çel û pênc hezar zêr, sed û deh hezar zêr kirî.

# PÊLOŞÎ U SISTÎ

**Biranol** Ev pêloşî û sistiya me mirineke tevayî şanî dide. Belê çak bizanin û xwe mexapînin. Xebata azadiya welêt ne ev e û tukes bi vê rêveçûnê ne gihaye qonaxê. Herwekî di nivîsara berî vê de jî min goti bû tiştê ko nabe, kesan ne ditiye. Ezê bûyereke xwe dîtî ji we re ber pêş bikim:

Ji ber ke ez li Cizîrê di Amûdê de dikançî me, divayên xwe pertel û tiştan derim ji Helebê dikirim, tînim. Herwekî berga riya min Hesîçe û Dêra-Zorê ye; tevi rêwiyan em ji Dêrê gihîşti bûn hember Reqayê. Makîna me di heriyê de ma û makîneke din jî hat û li me sekinî. Li gora adetê tevî ajotek, em her du alî (12) peya lê kom bûn û me zor dida xwe. Lê me tu havil ne dikir. Ez lê varqilîm û min bi tenê (5) peya niqandin û ew dane sondê ko emê xwe ji dil û can bidin-ê.

Piştî peymanê me xwe ji dil da makînê û wek qertel ji newalê çeng kir jor û lê siwar bûn û gibîştin daxwaza xwe.

Em ji tiştê tewş û bêkêr re merd in. Her keyakî me ê nexwende sê an çar rojnameyên biyaniyan bi çil kaxedî dikire û Hawara ziman û tîpên xwe nakire. An dikire heq nade. An jî bi gote-gotê hêj dide. Herwekî gotiye: Yê bûkê ne zar e, ne ziman e; yê xesûyê ne dîn e ne îman e.

Malxirabinol carekê çavên hişyariyê vekin û li xelkê binihêrin. Ma hon ji her tişti didexisin: çima ji tiştê qenc û pêşveçûna xelkê û neyarê xwe naqehirin?.

Yezdan zanîn û çav daye, ji bo dîtin û naskirinê. Yê me bi tenê ji bo bindestî û çavpehinkirinê. Ma hon nabînin adet û awayê pêşveçûna xelkê tev de ji me hewisîn û me ji bîr kirine. Herwekî, di stûnên jêrîn de li bember hev dû bi rêz in:

| ÎRO YÊN WAN | BERÊ YÊN ME |
| --- | --- |
| Sala nuh | Nuhroz |
| Roman | Çîrok û dîrokên me |
| Mûsiqî | Saz, stran, bilûr, dihol û zirna, kevnare |
| Îstiqbal û dawet û intixab | Wek roja Sitî dane Tacdîn. Herwekî Ehmedê xanî gotiye:<br>Texterewan wekî gemî bû<br>Behra di bin de ademî bû.<br>Ji mala mîr heya mala Tacdîn merov sekinîn, textê wê bi hewa dan hev, heya gihandin mala zavê. |
| Dans | Dîlana Cerg-û Bez. Keç û xort tev de dikevin-ê. |
| Miahede | Soz û bextê eşîran |
| Talîma siwarî | Terada cejin û şahiyan ya şerevaniyên me. |
| Mobîlye | Mehfûr û xaltçeyên me ên bi neqş. |

Heçî zane ji xwe zane; heçî nizane baqê niska ye.

HESEN HIŞYAR

# MELA

## EVDILMECÎDÊ KEN'ANÎ

Mela Evdilmecîd ji xelkê welatê jor e. Heyamê sala 1925an ew jî daketi bû Cizîrê û bi awayê melan ew jî li nahiya Amûdê li gundê « Gundor » disekinî.

Merovekî ji hevîna welêt û milet ne bê xeber bû. Benga Hişyar li ( Sinceqa Sadûn ) dibistana kurdî vekir. Pir caran nav di şagirtan dida, eger rê pêketa dikarî bû li gora xwe xebata welatê xwe bike. Lê mixabin mirinê jê re ne dûman. Ji ber vî qasî me dikir ko bi rûpelên Hawarê navê wi bête nivîsandin. Ji ber ko mêr dimire nav dimîne; mêrê ko mir ew mirar dimire eger navê wî namîne. Û ji bo ko zendeyî jî ji xwe hêvîdar bin. Vaye qesîdak ji qeşîdeyên wî ko bi evîn gotiye:

Cana were der ji niqab û ji hicabê bê şek te hebînim
Ez hesretê te mame di vê qehr û ezabê pir mest û [hezin im
Beybûde meke emrê ezîzî di beqayê xurşîdê semayê
Eşqa te dilem sotî çi hacet bi itabê her subbe êdîn im
Pesnê te bi min qeyd û kemen zulfû ey şahê nigara
Suhti te li min qelb û ceger ez bi şerabê ez nûrê [cebîn im
Te divê tu li min berq û birûskan bireşînî wer [min bihebînî
Wer zilfê siyah derxe bi mawerd û kulabê dil xerqe- [yî xwîn im
Te divê ko min zir û zeber kî di hewayê wer der jî serayê
Te divê ko qiyamet li me bi xwe rabit da ez te [bibînim
Ger bête sîmaa'n bi qidûma te mibarek sed car [mibarek
Rûhem ne mizgîna beşîrê wê cewabê laiq wê dibînim
Het-ta ko me niy-yet pencan di me biçkînî rûhem [derînî
Bel ta bi qiyamet ez di nêv ax û tirabê nalîn û enîn im
Caran sûndê dixwim ez b' brûyê bilalê ser çeşmê xezalê
Şeb ta bi seher sebr û qerar bê te me nayê dil behrê [enîn im
Ken'anî tu bi eşqê mesoji cegerê reş ba eqlê mişew-weş
Kena'nî we şinabi çi nûşî şerabê der ilmê yeqîn im.

Amûdê: 8-4-1943

Şandox: SELÎM Ş. M. HISÊNÎ

# CHANSONS

La première des deux pièces qui suivent est une chanson de guerre yezidie, que j'ai recueillie chez les Bchéris. Elle est certainement très ancienne, puisqu'elle fait allusion à un combat livré par la tribu des Khaletân, groupement jadis puissant mais qui a disparu depuis plusieurs siècles. Elle présente donc, bien qu'incomplète, un très grand intérêt historique.

La seconde est un « lavij » des Berwaris ( Botân ). comme les autres chansons de la même povince que l'on a lues dans les nos 28 et 41 de Hawar, elle a pour thème un dialogue entre deux amoureux. Le printemps des cimes sert de toile de fond à cette idylle; chaque strophe est introduite par une évocation de paysages alpestres: hauts sommets dont la neige est en train de fondre, torrents qui dévalent des montagnes, oiseaux migrateurs dont les vols strient le ciel, le coucou qui chante déjà.

## ŞERÊ XALITA

Delana, xweş Delana!
Pêşiya malê me şer e, paşiya malê me ferman a!
Şerê feqîrê Êzîdiya, sofiyê Misilmana
Xweştir e ji şerê nêrî û berana!

Delana Başo, wa bi şitil!
Çend peyayê Mala Zoro li serê girê Qereçêrî
[ bûne gutil,
Derbekê dane Hesarê cibo û Bimbaê Mîro,
[ Mîço ê mala Şêx Îsa.
Ji mala bavê mi qelandin tovê bîst û pênc
[mêrên rimbiqetil.

Delana Başo, li berê bendê!
Mertela destê Hesarê cibo giran e, kete zendê.
Şerê feqîrê Êzîdiya û Sofî Misilmana
Xweştir e ji reqs û govendê!

Lê darêJ Delana!
Pêşiya malê me şer e, tàlî ferman a!
Pêşiya eşîrê Êzîdxan çûye tila Botana.

Delana Başo, bi qirkor e!
Hespê Bişarê Zoro di meydanê de bore bore.
Derbekê dane li Hêsarê Cibo, Bumbaê Mîro,
Ji mala bavê min qelandin tovê bîst û pênc
[ şêxê serbipore!

## LA GUERRE DES KHALETAN

Delana, beau Delana!
Devant nos tentes, la guerre! Derrière nos
[ tentes, la proscription!
La bataille que livrent les Faqirs yezidi aux
[ soufis musulmans
Est plus belle à voir que les combats des boucs
[ et des béliers (1).

Delâna Bâcho, couverte de broussailles!
Quelques guerriers du clan de Zoro se sont
[ groupés sur le tertre de Qaratcheri.
Ils ont touché Hesâré Djebo et Bumbaé Miro,
[ Micho du clan de Cheykh Isa,
Ils ont enlevé à la maison de mon père la
[ semence de vingt-cinq braves aux lances
[ meurtrières.

Delâna Bâcho, face à la falaise!
Le bouclier que Hesaré Djebo porte au bras est
[ trop lourd, il a glissé sur son poignet.
La bataille que livrent les Faqirs yezidis aux
[ Soufis musulmans
Est plus belle à voir que la danse et la ronde!

O Delana!
Devant nos tentes, la guerre! Derrière, nos
[ tentes, la proscription!
L'avant-garde de la tribu d'Ezidkhân (2) a ga-
[ gné les collines de Botân.

Delâna Bâcho...(3).
Le cheval de Bechâré Zoro renâcle sur le pré.
Ils ont touché Hesâré Djebo, Bumbaé Miro,
Ils ont enlevé à la maison de mon père la
[ semence de vingt-cinq cheykhs à la tête
[ chevelue (4)

## LAVIJ

Ezê li Xana Gosehê fekirîm, alîkî jê herifti.
Ezê li dora girê Niskîn fekirîm, sosin û beybûn
[ tê re bişkiftî.
Xwezika wî lawî; du yar li gundî hebin, êk yar
[ be, ya dî dezgirtî!

Ezê li Herekolê fekirîm, ne mane kevî.
Dora Kanî Ferşikê nêrim, porjan lê bîne dar
[ û devî.
Ezê terka lawikê xwe nadim heta Korkendîl
[ bihele,
Ji min û lawikê min re bibe gakêl û zevî!

Ezê li Mêrgûmarê fekirim, mîrê hemî besta,
Li Herekolê fekirîm, keviyo lê bîne mîna tilyê
[ desta.
Xwezika min behr li bejna bilind hebiya,
Bila Xwedê emanetê xwe ji min bixwesta!

---

(1) Les « faqirs » forment chez les Yezidis une caste religieuse. Ces vers renferment une allusion aux combats d'animaux, jadis fort prisés au Kurdistan.

(2) C'est à dire des Yezidis. Il y a là une indication précieuse sur les anciennes migrations des Khâletis.

(3) Le sens de « qirkor » m'échappe.

(4) Les « faqirs » portent la barbe et les cheveux longs.

Ezê li Arnosê fekirîm, mîrê hemî çiya,
Lêbî jê derbîne, diçin ser milkê Kaxpiya,
Ezê çengilê keleşgewra xwe bigrim, birevînim,
[ bibim nav malê Qoçebegiya.

Ezê li Axyolê fekirîm, çi çiyakî xezeb e!
Ezê li Arnosê fekirîm, qentarê nêriya lê bine
[ celebe.
Evînika xelkê dinya alemê hemî li ser dev û
[ lêvan in,
Ya min, rebena Xwedê, tinê ji dil û kezeb e!

Qulingo, Xwedê kî ezê nizanim ne tu koçer î,
[ ne holis î.
Tavikî baran dibarê, piçkê berfê ser çengê te
[ diqerisî,
Dema rêka te li Cizîra Bota bikevit,
Tu ji ber min ve keyfa zerî esmera bipirsî.

Goyîno, xirabo, çire dengê te li min nayê?
Tu sibeha dixwînî li gumbeta Cûdî,
Êvara xwe tavêjt berojî Şaravayê.
Tu kirasê belgê mishefê wergirî, baweriya mi
[ li te nayê!

LAVIJ

LE JEUNE HOMME.

Je contemple le khân de Goseb, un côté s'en est écroulé.

Je regarde les alentours du tertre de Neskin (5), lis et paquerettes y fleurissent.

Comme j'envie le gars qui, dans son village, a deux amoureuses, l'une pour maîtresse, et l'autre pour fiancée!

LA JEUNE FILLE.

Je contemple le Harakol (6), il n'y subsiste trace de neige.

Je regarde les alentours de la source de la Pierre Plate, le chardons y poussent, drus comme des arbres, touffus comme des buissons.

Je ne renoncerai à celui que j'aime que lorsque fondront les neiges du Korqandil (7),

Et lorsque nous aurons, moi et celui que j'aime, au sommet de cette montagne, notre labour, notre champ.

LE JEUNE HOMME.

Je contemple le Mérgoumâr, prince de tous les prés innondés.

Je contemple le Harakol, il n'y subsiste traces de neige, que minces comme les doigts de la main.

Puissé-je avoir part ( à l'amour ) de m'amie à la taille svelte!

Et que Dieu me réclame alors ( l'âme ) qu'il m'a prêtée!

Je contemple l'Arnos, reine de toutes les montagnes,

Des torrents en dévalent, qui submergent les terres de Kakhpiya (8).

Prenant le bras de ma belle, je la veux enlever; je la conduirai parmi les tentes des Qotchebegi (9)!

LA JEUNE FILLE.

Je contemple l'Aghiyol (10), quelle montagne terrible!

Je contemple l'Arnos, les bouquetins mâles y défilent de cent façons.

L'amour des autres n'est que de bouche et de lèvres.

Pauvrette, le mien seul est de tout cœur!

LE JEUNE HOMME.

O grue (11), pour l'amour de Dieu, es-tu nomade, es-tu sédentaire?

Il bruine, les flocons de neige se glacent sur tes ailes.

Si ta route passe par Djezira Botân,

Informe-toi, en mon nom, de la santé des jolies bunes.

LA JEUNE FILLE.

Coucou, maudit coucou, pourquoi n'entends-je pas ton chant?

Chaque matin, tu chantes à la cime du Djoudi (12),

Et le soir, tu gagnes le Chârâvâ (13).

Si même tu portais une tunique faite avec les feuillets du Coran, je me méfierais de toi(14)!

TAWÛSPARÊZ

(5) L'un des sommets du Harakol.

(6,7,10,12,13) Hautes montagnes du Botân.

(8) Village de la plaine.

(9) Tribu nomade du Botân, réputée pour la beauté de ses femmes.

(11) La grue est souvent évoquée dans les poésies populaires kurdes. On lui demande en général, comme ici, de porter des messages.

(14) D'après la légende, le coucou aurait jadis été un homme. Ayant assassiné son frère il fut changé en oiseau. Il crie: « Keko, keko! » ( Frère! Frère! ), ou encore: « Kê kuşt? Kê kuşt? » ( Qui a tué? Qui a tué? ). Cet oiseau a donc mauvaise presse dans le folklore Kurde.

L'usage existait autrefois de porter des chemises, sur lesquelles étaient brodés des versets du Coran, afin de se préserver du danger.

Kiriyariya Hawarê:
Ji bo Sûriyê 5 lîreyên sûrî - Ji bo welatên din lîrekî ingilîzî
Xwedî û gerinendeyê bepirsiyar: Mîr Celadet Alî Bedir-Xan, Şam—Sûriye
Directeur Propriétaire: Emir Djéladet Aali Bedir-Khan, Damas-Syrie

ŞAM — ÇAPXANA TEREQIYÊ — 1943

SAL 11 — HEJMER 55 — SÊŞEMB 15 HIZÊRAN 1943

# HAWAR

ANNÉE 11 — NUMERO 55 — MARDI 15 JUIN 1943

KOVARA KURDÎ ✶ REVUE KURDE

DI VÊ HEJMARÊ DE



# TEFSÎRA QURANÊ

23 — Mehrkirina jinên xelkê ji we re heram e, meger ko ev di meydana şerî de ketine destê we û bûne cêriyên we. Dot û jinên din hemî, ji we re, bi emrê Xuda hatine helal kirin, da ko hon dest ji zinayê bikişînin, û di riya helalê de, bi pereyên xwe, li gora daxwaza dilê xwe, ji xwe re jin û cêriyên helal werînin.

Gava hon, ji xwe re jinan ditînin û nîzîkî wan dibin, divê hon mehra wan, herwekî hate gotin û heke dil dikin hêj zêdetir jî, bidin wan; heke hon, bi wan re li hev tên, û jê pareké an mehra ko ji we birin, bi temamî vedigerînin we, standina wê, ji we re nabe tu guneh, Xuda zana û fêris e.

24 — Heke destê we teng e, û hon nikarin, ji xwe re jineke misilman û aza werînin, bila cêriyeke misilman pêda bikin û bi destûra xwediyê wê, ji xwe re bînin û li gora adet û edaletê mehra wê bidin xwediyê wê. Xuda baweriya we û halê we dizane. Herwekî hon hemî aza û cêrî, ji hev û dû hatine afirandin, heye ko hin ji we ji hinên din çêtir in.

Cêriya ko zewicî divê qedrê namûs û şerefa xwe bigire; mirovekî din, ji xwe re neke dost û yar, û zinayê neke; heke cêrî paş ziwacê, van tiştan dike, cezayê wê, nîvê cezayê jineke aza ye.

Destûra anîna cêriyan herçend jî, ji mirovan re hate dayîn, ko bê jin nikarin bisekinin, û ji kirina zinayê ditirsin; lê herhal ne anîna cêriyan û sebir kirin ji we re bixêrtir û çêtir e. Xuda delal û rehîm e.

25 — Xuda dixwaze hikim û emrên xwe şanî we bide û we bigehîne riya yên berî we, riya Ibrahîm û Ismaîl a rast. Xuda rêberiya we dike, da ko hon xwe ji gunehan bidin paş. Xuda ji tobekaran re tobê dide, Xuda delal û fêris e.

26 — Xuda dixwaze ko hon tobekar bibin û ew di gunehên we bibore; xudankitêb û dîn-nezan dil dikin, we ji riya rastiyê derînin.

27 — Herwekî mirov qels hatine afirandin Xuda dixwaze barê mirovan sivik bike.

28 — Gelî bawermendan...... Malê hev û dû bê heq û bê rê mestînin û mexwin, meger ev, di riya ticaretê de û bi riza her du terefan çêdibe. Nefsa xwe mekujin û bi kuştina mirovên din, canê xwe medin kuştin. Xuda bi we re delal û dilnerm e.

29 — Yên ko van tiştan dikin, divê bizanin ko emê wan bavêjin agirê dojehê, û gihandina wan a wê derê ji me re ne tu zehmet e.

30 — Heke hon destên xwe, ji gunehên mezin dikişînin, em gunehên we ên piçûk jî efiw dikin, û we degihînin bihuştê.

YÊN KO XIZMETA İNSANIYETÊ KIRINE:

— 1 —

# LWÎS PASTÖR [ LOUIS PASTEUR ]

1822 — 1895

Gava em çêl li mirovên ko xizmeta însaniyetê kirine dikin, ne gerek e em bibêjin ko wan mirovan di yek wextî de xizmeta miletê xwe jî kirine. Miletê wan jî birekî însaniyetê ye. Ji lewre heçiyê ko xizmeta miletê xwe dike, xizmeta însaniyetê jî dike. Bi tenê mirovine welê hene ko bi keşf û îcadên xwe rast bi rast û bila wasite xizmeta însaniyetê dikin. Herkes ji wê xizmetê rasterê fêdê dibîne. Pastör jî wan mirovan e ko ji keşfên wî însan, heywan her candar fêdedar bûye û heta roja qiyametê jî ewê jê fêdedar bibin.

Lwîs Pastör li 27ê Kanûna-pêşîn, sala 1822an li Fransê, di bajarê Dolê de ji deya xwe bûye. Bavê wî di ordiwa Napoléon de esker bû û bi mêraniya xwe deng da bû. Gava felek li împeratorê Fransê geriya û Bonapart şikest û neyarên wî ew û eskerên wî hêsîr girtin bavê Lwîs qebûl ne kir ko şûrê xwe veke û bispêre dijmin.

Bavê Lwîs digot ez şûrê xwe nadim. Xuya dikir ko mirin da bû ber çavên xwe. Zabitekî nemsewî gava ezm û qerara wî eskerî dît, jê geriya û destûr da ko şûrê wî pê re bimîne.

Ji pişta wî bavê mêr mêrekî qenc daketi bû. Lê kur ne şerê însanan; lê şerê nexweşiyan dê bikira.

Lwîs hêj du salî bû. Êvaran, gava bavê wî ji xebatê vedigeriya mal kurê xwe dikir ser ejnûyên xwe, jê hez dikir û digot-ê: « Kurê min, di jiyîna eskeriyê de min gelek meşeqet kişandine. Min divêt tu bixwînî, bibî zanakî xurt. Min navê ko tu jî wek min zehmetê bikişînî ». Deya wî dikenî û bi ser ve dikir û digot: « Belê divêt kurê me bixwîne ».

Dê û bavê Lwîs gava ev tişt digotin, bivê nevê wan jî wek kurê xweê dusalî tiştê ko ayendê jê re vedişart ne dizanîn.

Di vê navê de famîlya Pastör guhasti bû bajarê Êrbwayê. Ji ber ko bêv di wî bajarî de debaxaneyek heb.ı. Lwîs jî dest bi xwendinê kiri bû û diçû dibistanê; lê ne ewçend heweskar bû. Li dibistanê ji xwendinê bêtir bi çêkirina resimên heval û mamosteyên xwe mijûl dibû. Carina jî li şûna ko here dibistanê, diçû ber çemekî û masî digirtin. Lwîs di resim û neqşê de gelek xudan-qabilyet bû. Dibêjin ko lê bixebitiya wê bibiwa resamekî mezin.

Bavê Lwîs li ber halê kurê xwe diket, ji ret lê dikirin û nûxweriyê xwe dihêvote wxendinê. Ji xwe gelek ne borî zanayê ayendê dev ji resim û masîvaniyê berda û meyla xwe da xwendinê.

Lwîs bû bû şanzdeh salî. Bavê wî rabû û ew ji bo xwendinê rêkire Parîsê. Lê bihina Lwîs, li Parîsê teng bû û zûka bêriya gundê xwe kir. Lwîs di vê babetê de ji bevalekî xwe re gotiye: « Ax min careke din bihina debaxanê bihin bikira. Ez dibêjim qey bihina min pê wê vebiya »

Lwîs li Parîsê gelek dom ne kir vegeriya gundê xwe. Bavê. wî vê carê kurê xwe rêkir bajarekî nîzingî gundê wan. Vê carê Lwîs xebitî û yekcar meyla xwe da xwendinê; nemaze hikmet û kîmyayê.

Lwîs di sala 1847an de şehadetnama tibiyê girt. Pastör hingê 25 salî bû. Pastör beriya ko şehadetê bigire, hêj di dibistanê de dest bi keşfê kiri bû. Du madeyên kimyewî yên ko beriya hingê wek madeyine xweser dihatine besêb îsbat kir ko ew made ji yek eslî ne.

Pastör piştî ko şehadetname girt di ûnîversîta Strasbûrgê de bû bû miawînê seydayê kîmyayê. Êdî Pastör terka kîmyaxanê ne dida. Dibêjin ko di roja ziwaca wî de rexma ko vexwendî tev de hati bûn û her tişt hazir bû bû; Pastör xuya ne dikir. Lê geriyan û ew di kimyaxanê de peyda kirin. Pastör ji bîra kiri bû ko roja ziwaca wî ye.

Pastör ji Strasbûrgê hati bû Parîsê û di sala 1867an de di Sorbonê de dersa kîmyayê digot.

* *

Cerahî yanî qelaştina bedena mirov sinhêtekî kevin e. Lê heta keşfên Pastör gelek caran nexweş bi emeliyatê diketin û dimirin. Li gora statîstîkên wî wextî ji mirovên emeliyatbûyî ji sedî çil xelas ne dibûn. Ji lewre gava digotine nexweşan divêt em ji te re emeliyatê çêkin; zû zû pê qaîl ne dibûn. Nexweşan digot: « Ma çire bila sebeb em xwe bidin ber êşa emeliyatê. Ma dawî dîsan ne mirin e. Ji me re çêtir e ko em bê emeliyat bimirin ».

Belê hingê piraniya nexweşan bi tesîra emeliyatê dimirin. Lê ne di dema emeliyatê de an piştî wê. Lêbelê piştî du sê heftan. Yanî emeliyat qenc çêdibû, devê birînê, carina, dihate hev û piştre, ji nişkekê ve xwîn jehrî dibû, canê nexweş diwerimî û nexweş emirê Xwedê dikir.

Ma çire? Heta hingê kesî ne dizanî. Heta hingê bijîşkan bawer dikir ko mîkrob di ber derên nexweşan de xwe bi xwe û bêî sebebeke derveki peyda dibin; di canê nexweş de zêde dikin û wî dikujin.

# DÎWANA MELÊ

— 42 —

Tu dizanî bi Xwedê min tu xeyalî şeb û roz
Bi xeyala xwe mudam min tu lî bal î şeb û roz
Her bi mîzan direşînin cegerê tîr û xedeng
Ji neseq saîqe me j'qewsê hîlalê şeb û roz
Mislê goyîn te rewan nale ji dil tên miskîn
Em nizanin tu çi ra herwe dinalî şeb û roz
Te ji feryad û fîxanan bi xwe bilbil ker kir
El-lah el-lah ji çi derdî weh dikalî şeb û roz
Da ko dîlber qedemê lê binehit rewşen'kit
Lê tu xwînê ji çavan vedimalî şeb û roz
Te tenê zewq û sefa kir be çunîn dilberê ra
Sernixwîn geh şibhê nûn geh wekî dal î şeb û roz
Fetweya pîr û melaya tu bi ilhamê bihê
Wê meyê her we dinoşî bi helalî şeb û roz.

— 33 —

Çîn çîn kirin zilfên siyah keskê atlas e qeba
Êdî nîşan nadin xweya têkil kirin badê seba
Min dî seba daye seher medarê bedrê kir bi ker
Qews û qezeh jê hate der dîsa bi zilfan ra teba
Îro li me bedra temam enber fcşand û sed selam
Ey Hudhudê şîrînkelam ehlen we sehlen merheba
Min dîlberek wek dur heye mehbûbek şîrînsur heye
Husn û cemalek pir heye Belqîs sifet mesken Seba
Me d'vê ko dîsa dîlberê hey hey li islûba berê
Keşf bî ji toqa pencerê bê û biçî teşbîhê ba
Şûx û şepala meyperest ew zalima hişyar û mest
Wê nameyê xef de bi dest fî tey-yuha neşr û nebat
Bêj wê şîrîna surperî durdaneya ez miştirî
Ka ebd û peymana berî bê feyde çû teşbîhê ba
Meyşekera spî dest û zend zahim bi halê name xwend
Lêvan tebesim kir ji qend mastin keban û fir û ba
Dîlber bi halê name dî nasî ko nîşana me dî
Nûnek mixalif tê nedî hel qelbiha nehwi s-seba
Qasid bi meqsûda me hat ba mijde û emr û berat
Nîşan hinarin hem xelat şehzadeya gulgûn qeba
Îro mecalê hate wext dîsa ciwan bû min di rext
Ew lamia danî ji text ma kane þerqîn xwe leba
Selwa rewan zêrîn wereq ç'çek melê dîn yek neseq
Yaqûtiha yuhkî şefeq yulikî uqûden kewkeba.

---

Lê Pastör hi vê nezeriyê qail ne dibû. Zanayê mezin bi eqîda xwe a nû ket kîmyaxanê û li mîkrobên ko mirovan dikujin geriya û piştî xebateke zor îsbat kir: mîkrobên ko mirovên emeliyatbûyî dikujin xwe bi xwe û ji canê wan peyda nabin, ew mîkrob ji derve tên, dikevin hundirê canê mirov, tê de zêde dibin û nexweşan dikujin. Ew mîkrob jî wek tozê di hewayê de dibirin bi dest û aletên emeliyatê ve dibin.

Piştî ko sebeb bati bû eşkere kirin tevdîr hêsanî bû. Diviya bû dema ko beden dibate qelaştin nehîlin ko mîkrobên derve bikevin hundirê bedenê. Mîkrob tiştine ewçend hûr in ko bi çavan nayine dîtin. Lê mirov bêî ko wan bibîne dikare wan mebiw bike. Dermanin hene ko mîkroban dikujin. Oda emeliyatê bi wan dermanan tête şwiştin, aletên emeliya tê jî têne kelandin û sotin û bi vî awayî ew jî ji mîkroban têne safî kirin. Herçî bijîşk destên xwe bi dermanan dişon û lepikine kewçûk yên ko hatine kelandin bi destî ve dikin. Bi vî awayî rê ji mîkroban re çênabe ko bikevin hundirê bedenê û zererê bigehînin me.

Nezeriya Pastör ev bû. Wek her tiştê nû ev nezeriye jî kete ber eksê xelkê. Bijîşkên wî zemanî henekê xwe pê kirin. Lê piştî tecrîbene gelêr ( mite'ed-did ) gava rastiya nezeriya mîkroban hate seh kirin xelk li dora Pastor civiyan û qedirê wî zanîn. Êdî nexweşên emeliyatbûyî bi piranî dijîn û kêm caran dimirin. Xwedê dizane heta niho, çend mirov xêra nezeriya Pastör ji mirinê xelas bûne.

Pastör piştî ko nezeriya mîkroban danî û ev nezeriye çû serî, xêra vê nezeriyê gelek tişt keşif kirine. Di nav hinên din de mîkrobên ko nexweşiyan diguhêsînin û wan bi peyayên sax dixin. Di vê navê de Pastör dermanê seyê har û yê dîftêryayê jî peyda kir. Ev her du nexweşî ji nexweşîne mîkrobîn in. Pastör mîkrobên wan keşif kir û ji bona wan mîkroban dermanine welê xurt peyda kir ko ew bi wan dermanan têne kuştin. Wan dermanan bi şiringê dikin bedena mirov û ew têkilî xwînê dibin û wan mîkroban dikujin û nexweşan sax dikin.

⁂

Franse welatê hevrîşim e. Di nîvroyê Franseyê de xelk kurmê hevrîşim bi xwedî dikin. Hevrîşimê Liyonê bi nav û deng e.

Di wextê Pastör de nexweşîk bi kurmên hevrîşim keti bû; kurm pê dimirin. Ev tişt ji bo xelkê nîvroyê Fransê afetek bû. Wezîrê ziraetê li ber vê afetê bêgav ma û miracetî Pastör kir.

Pastör rabû çû nîvro û leboratwarekê, tê de danî û qederê çar salan hê etlahî bi şev û roj xebitî û dermanê vê nexweşiyê peyda kir û gundiyên hevrîşimkar ji feqirî û xizaniyê xelas kirin. Hingê hevrîşimê Fransê li salê sih mîlyon freng kar tanî.

Di vê hengamê de bû ko keç û bavê Pastör emirê Xwedê kirin. Pastör bi xwe jî ji ber vê xebatê û mirina keç û bavê xwe gelek perîşan bû bû û nexweş keti bû. Ewçend ko gelek caran xelkê wî jê imîda xwe dibirîn. Lê Xwedê dixwest ko Pastor hêj xizmeta însaniyetê bike û qasidê xwe jê re rênekir.

⁂

Dîsa di wextê wî de nexweşiyek bi mirîşkan keti bû û bi hezaran mirîşk pê dimirin. Ji

## DAYLAN

### JI BÎRÊN ROJÊN KEVIN

Hê ji min dil herişandê
Suhtiyê arê te me,
Hiş û aqil şewişandê
Sews û bîmarê te me.
Bêt li min binhêr çi roj e,
Eşq hinavan, pir disoje,
Kir li min dinya te doje
Zar ko neyarê te mel..
Her çima ji min bi naz î?
J'bextê kambax her digazî,
Bes nîne ev xêrnexwazî?!
Xweş mîvandarê te me.
Bo çi evqas bê îman î?
J'pirsa halan cangiran î!
Hinde sal in ko dizanî,
Ketî ber barê te me..
Daylanê b'navê Xuda kî,
Destê min bigrî û rakî,
Dil xopan bûye avakî,
Gêj û sîngjarê te me..
Çer dikim tu nayê rayê
Can ji bo te kir fedayê
Bîr bibe roja Belayê
Ez xerîdarê te me.
Min qelen da bû Humayî,
Dil û can b'heftê belayî,
Ger çiqas pirtir hêja yî,
Ma ne xemxwarê te mel...

.:.

Hê çira şewlê li dil da
D'bistanê reyhan û gul da
Navê me bilbil te hilda
J'hingê va pergende me.
Sosina nava welat î
Wey li ser çavên me hatî
Ro li min îro hilatî
Rûgeş û pirxend eme.
Pirs û sokendan di bîr im,
Canecan û dil esîr im,
Lê bizan ko hê feqîr im,
Ser di her şermende me.
Matê wê rewşa pilengî
dişkênin bazik û çengî,
Her tu serdar û celeng î
Mîr tu î ez kole me.
Min berî j'eniya keleş bû,
Him Sefa û berê reş bû,
Hec tikûz Merwe pê weş bû,
Tehtê bîra Zemzem e
Ebrû te xençer mîsal in,
Wek tîran bijang heval in,
Dilketî ji dest dinalin,
Sofîyê b'cerbeze me.
Çavên te kaniya mirazan,
Dame ber pençên du bazan,
Wekî rimbazên Berazan,
Ez kirî exterme me.
Dildize çenga qilotî,
Difnê teyrîn cerg disotî,
Wî zarê şîrîn digotî,
Sorgula tewrinde me.
Sê deqan j'dêmî veniştin,
Hêreker tev da ne hiştin,
Hin revandin hin dikuştin,
Yek ji van şerpeze me.
Lêv yaqût didan mirarî,
Mest kirim pelka giharî,
Wek mesîh miriyan dikarî
Vejînî, ez mirde me.
Dilhewandê b'xêr û bêrê,
Biskherîrê ser bi zerê.
Kirime dergehvanê dêrê,
Dêr tu î ez keşe me.
Veger himbêzê xwe têxim,
Tayê dil b'pêta te vêxim,
Can bi canan ra bi rê xim,
Ma tu hê qey ez hemel...

Madegeskar: Sent-marî 15-3-936

OSMAN SEBRÎ

---

milê din bi pez re jî nexweşiyek peyda bû bû.

Hikûmetê ji nû ve berê xwe da Pastor. Pastor mirîşk derman kirin û li nexweşiya pêz hûr bû. Heb bi pêz keti bû.

Nexweşiya pêz ji berê de nas bû û diktor û beytaran ew li gora xwe derman dikirin; lê tu havil jê çênedibû. Pastor piştî ko li ser nexweşiyê vebû rabû ji her welatê Ewropayê diktor û pispor ezimandin û civatek danî. Pastor 50 pezên nexweş anîn. 25ên wan pisporên din bi isûlê xwe derman kirin. Herçî hîst û pêncên mayî Pastor ew li gora keşfa xwe derman kirin. Ji pirzikên wan hinek edap girt û ew edap li pezên nexweş şiringe kir. Pisporên din dikenîn. Lê piştî çar rojan pezên ko wan derman kiri bû tev de mirin û yên ko Pastor derzî li wan xisti hûn hemî jî sax bûn.

.:.

Pastor piştî vê zeferê xwe yekcar da nexweşiya seyan, seyên har. Heta hingê dermanê segestî şewitandin bû. Piştî gestinê heta bi nîv saetê cihê gestî bi hesinekî sor disotin. Lê tu bavîl jê çênedibû, nemaze zaroyên gestî, tev de dimirin.

Pastor ji zarotiya xwe ve bala xwe da bû hariyê. Gava neh salî bû, di dora gundê wan de gurekî har peyda bû bû. Wî gurî dev li heywan û însanan kiri bû. Heywan û însanên gestî tev de miri bûn. Di nav wan de lawikek hebû. Lawik anî hûn dikana hesînkerekî û ji, pêş çavên Pastor ve birîna wî soti bûn. Pastor ev menzera hezîn qet ji bîr ne dikir û ji hingê ve kiri bû serê xwe ko ji vê êşa xedar re tevdîrekê bibîne.

Êdî Pastor li seyên har digeriya. Heçî deran de saxlûxa yekî didan; diçû wê derê; gilîza wî tanî û ew tehlîl dikir. Piştî tecrîbeyine gelêr Pastor rabû ji gilîza seyê har seromek çêkir û ew di canê kêvroşkekê şiringe kir û paşê ji wê kêvroşkê re gilîza seyê har da vexwarin. Kêvroşk ne mir. Ev serom li ser gelek kêvroşkan ceriband ne yek jî ne mir. Ev miwefeqiyeteke mezin bû. Lê derman diviya bû li ser însên bihata ceribandid.

Di sala 1885an û di meha Çiriya-pêşîn de, di çiyayên Jûrayê de şeş xort li ber pez bûn. Seyekî har direjî wan kir. Zarokan ji ber baz da. Seyê har xwe gihande piçûktirê wan û ew avête erdê. Birayê wî gava ev hal dît li se zîvirî û birayê xwe ê piçûk bi zor xelas kir. Lê seyê har dev lê kiri bû û diranên wî di zenda wî a çepê re çû bûn. Lawik anîn bajêr, hakimê bajêr şîret li dê û bavê wî kirin

## MEMOZÎNA

### EHMEDÊ XANÎ

— 14 —

*MILAQÎ-BÛNA TACDÎN Û MEMÎ YE BI SITÎ Û ZINÊ, MISTEX-REQ-BÛNA WAN E DI BEHIRA EŞQ Û EVÎNÊ.*

Wan her du gurî di came tebdîl
Wextê dikirin di şehrî tehwîl
Nagah ecayibek nima wan
Yek ciz' ji eqi qet ne ma wan
Dîtin di mehel-le û zikakan
Her kûçe û xurfe û şibakan
Sed taze ciwan ji rengê serwan
Dîba û herir û xez di ber wan.
Pansed ji keç û kur û rewalan
Ewçend ji qismi pîr û kalan
Enwa'i mizek-ker û mien-nes
Hindek di birehne, hin mileb-bes
Hindek di ealî û ekabir
Hindek di edanî û esaxir
Pêxwas binek, binek di serkol
Kaşo ji piyan û ser wekî hol
Sermest hinek, hinek di serxweş
Dembeste hinek, hinek di demkeş
Gûyende hinek, binek di xamûş
Pûyende hinek, hinek di medhûş
Hin came-deride, hin di serxweş
Hin eq'l-remîde, hin mişew-weş
Hindan dikirin fixan û feryad
Hin bûne ji qeydi eq'l azad
Heryek di meqamekî digergûn
Heryek bi cefayekê cegerxûn
Ev her du demek veman tehey-yir
Bûn xerqeyi lic-ceyi tefek-kir
Tacdîn sekinî û pirsiyar kir
Pirsa xwe bi êk yextiyar kir
Go ey xidirê rehi hidayet
Bêj' ev çi bela ye bê nihayet
Wî got du şehlewendi şed-dad
Îro li vî xelkê bûne cel-lad.
Herçî ko dibînin ew du serxweş
Filhal dikin niha mişew-weş
Wan go te ne di ko ew çi reng ın
Wî go du kur in, ziyade şeng in
Wan go ko bi şîr şeşper in ew
Ya ne bi xedeng û xencer in ew

Wî go ko bi xemzê û bi awir
Xelkê dikujin wekî bi keybir
Wan pirs dikir ko gur bibînin
Da bo xwe bi merdî dest hilînin
Her du di wî karî bûn ko nagah
Dîtin ko ji mehzi qudretil-lah
Ew ber du puser wekî du peyker
Tabende bi şeklî şahi exter
Yek hey'et û şikl û yek libas in
Em-ma di wî şehri reng nenas in
Siret-melek in surperi ne
Ne bayi'in ew ne mişteri ne.
Van her du biran ko ew du ewbaş
Dîtin dil û can vedan bi şabaş
Ewreng giriyan cinûn û waleh
Êdî qe ne bûn ji eql ageh
Ne fehm û xired ne eql û ne hûş
Gêr bûn li ser zemînê medhûş
Filcimle ji eql û cani têr bûn
Filhal ji dûr ve her du gêr bûn
Wan her du ferişteyên di kub-bar
Dîtin du melek ziyade dildar
Mehpare ne lîken afitab in
Dildarin e lê ceger kebab in
Teşbîh bi seydi nim bismil
Bê şib'h gihane hali mişkil
Naçar bezîne ser-şikaran
Fekrine rixê di wan nigaran
Zanîn ko ne seydî serseri ne
Serxêlî sipahi dilberî ne
Westan û nezer kirin bi diq-qet
Wan bate bi qelbî rehm û riq-qet
Elqis-se ji hisni van xezalan
Rehmek kete qelbi wan rewalan
Sir-ra dilî kir bi hev teel-luq
Nûra rixi wan bi hev teeş-şiq
Mekşûf teriqi aşinayî
Rûban qe ne kir ji hev cidayî
Yekrengî û sirf alemi xeyb
Zahir dikir it-tihadî lareyb
Hib-bê we kirin bi hev giriftar
Hisnê we kirin bi hev telebkar
Te digo ko çi qalib û çi meqlûb
Her çar çi talib û çi metlûb
Bê şibhe yek in çi ten çi erwah
Ew mit-tehid in çi can çi eşbah
Hib-ba di dilan we kir helawet
Buxza di dilan we kir edawet
Nisbet bi me hadis in edim in
Liken ji heqîqeta qedim in

Lewra ko cinûdi can mueen-ned
Çêbûne di ilmi heq muxel-led
Hin mu'telif in binek mixalif
Hin mixtelif in hinek mualif
Wan mu'telifan bi yek ve lîfet
Axir we kirin ne ma çu kulfet
Yanî ko ewan gurê di xûnxwar
Gava wehe dîtin ew birîndar
Ew her du bi sed dilan hebandin
Rûniştin û her du wergerandin
Gavek seyirîn li bejn û balan
Pêlek heyirîn li zilf û xalan
Gotin ecêb ev keçên di kê ne
Yan her du melaikê di Xwedê ne
Ev meywe li kê cihî giha ne
Ev gul di çi gulşenê nimane
Serwên di çi cûybarê kê ne
Teyrên di çi murxizarê kê ne
Mawerd ji hêstirê di gulgûn
Rihtin li ruxê di wan di pur-xûn
Eşqê kirî bûn wisane hişyar
Qet'a ne dibûn ji xwe xeberdar
Axer ko kirin bi xameya eşq
Hisna xeti wan li lewhi dil meşq
Wan ve ko bizanin ew çi esl in
Lewra ko nizanin ew çi nesl in
Enguştirê di wan ciwanan
Kêşan ji esabii d'xudanan
Xatem ji enamilê d'xwe kêşan
Danîne cihan ji boyî nişan
Yaqût bi mihriyan gehûrîn
Elmas bi şûşeyê d'belorîn
Sersal û xweşî ji dest bi der dan
Eyşê xwe bedel kirin bi derdan
Nagah ecanibin xuya bûn
Nakam kirin wedah û rabûn
Man her du bira wekî du seydan
Pabesti selasilan û qeydan
Rabûn ko şevek siyah û tarî
Şems û qemeran kirî tewarî
Reh şibheti murxi nim bismil
Bê qew-wet û bê tiwan û bê dil
Sersam dewar û ser'û mehrûr
Sewda û fiad û xebl û mexmûr
Sed car diketin asitanan
Het-ta ko gihane aşiyanan
Herçend gehiştine meqaman
Em-ma ko li wan du telx-kaman
Roj û şev û wext û sibh û êvarî
Yeksan dinima li wan bi yekcar.

---

ko zaroyê xwe bibin Parîsê cem Lwîs Pastor. Hemîn zarok mirî bû, lê heye ko...

Pastor gava lawik dît hinek dudilî kir. Lê ji ber ko di lêwik de tu hêvî ne ma bû Pastor rabû û şiringe li nexweşê xwe da. Xewa lêwik dihat lê xewa diktor ne dibat; gelo wê çi bibiwa? Pastor dermanê hariyê peyda kiri bû. Lawik sax bû û ji hingê ve ji mirovên segestî, beke hatine derman kirin, ji sedî bi tenê yek dimire. Lê beriya Pastor ji sedî sed dimirin.

⁂

Pastor bi vî awayî beta dawiya emirê xwe bi keşifan xerîk bûye û ji dinyayê re xizmetine mezin kirine.

Di sala 1870î de fransizan ji elemanan re pênc milyar freng tezmînat da bûn. Yekî ji hevçaxên Pastor gotiye: « Keşifên Pastor berberî van pênc milyon frangan in ko fransizan daye elemanan ».

Pastor li 28ê Îlona sala 1895an piştî nivro emirê Xwedê kiriye.

Civata ko navê wî lê ye « Ênstîtû Pastor » di vî warî de xebata vî fransizê mezin pêş ve tajo.

HEREKOL AZÎZAN

## DILJARÊ XEMGÎN

**Dilo jaro ji** xew rabe, ji derdê miletê xemgîn
Xebatê pir bike îro, bi serbestî bibe zengîn
Me Tacdîn û Çeko nînin, xeberdarê me bê Gurgîn
Bi tole û balafir rabin, bizozanê dilê xemgîn
Erê xortê ciwan pirsê li dapîra xwe qet nakê
Welatê me gelek rind e, eger carek temaşa kê
Li hawîrê cihan meyzê, xerîta wî xuya nakê
Mixabin miletê kurdî, welatê te bibê xemgîn
( Ditirsim eyî weten bimrim, ne bînim bextiyar î tû )
Li bin pencê neyaran tim, bi ah û nal û zar î tû
Bi wê xwîna şehîd û xa, ziyan rihtin bi xakê tû
( Binosin ba li ser qebrim, weten xemgîn û ez xemgîn )
Şev û rojan bi ahîn î, tu bes nakî ji van nala
Çi mikrob e li canê te, ko dewra wê dû sed sala
Here nik Nafizê kurdî, bijîşk e ew bi ehwala
Welatê min heta kengê, bi vê janê dibê xemgîn
Gelek milet bi vî derdî ketin lê wan hebû pisyar
Xebat û xwendinê zû zû, dezanê wan kirin serdar
Bi mêranî bi xwîndarî, welatê xwe kirin hişyar
Bi daxwaza xwe dil şa bûn, ji bel me kes nema xemgîn
Heyîn bo me çi hêja ye, ne arvane ne jî dore
Hewar û gazî yet dûr in, ne me zêr e ne me zor e
Nezanî çendî dijwar e, ji wê xweştir tenê gore
Hezar ya melkî û xanî, di vê rê de mirin xemgîn
Xebata bê sipas vêk re, bikin kurdê cihan alem
Wekî dil paqijî bo me, yekîtî jî divê her dem
Bi vî terzî welatê me, dizanim dê bijî an dem
Bedir-xan û Silahedîn, şehîdên we ne bin xemgîn
Çiqas derdê Xudê dane, li hember wî beye derman
Dibistanan bi lez çêkin, hepisxana bikin wêran
Nemaza xwendinê pir kin, ji bo me her ev in derman
Bijî her dem welatê min, weke Namî ne be xemgîn..

EHMED NAMÎ

## HEWAR E

Zozana mezin ya bê xudan e
Xortên welatî yêt jêk cida ne
Serkol û rûs in ne dexl û dan e
Evro' bewara şêrêt cerdan e
Hewar e, hewar, sed car hewar e
Zozan û çîmen mane beyar e
Xoyî û biyanî pêk ve neyar e
Pilingêt geriya mane bêçar e
Zeriyêt welatî ji birsa pîs bûn
Lawên zozanan serkol û rûs bûn
Pilingêt geriya bindest û xîs bûn
Sihiyêt gêran bê deng û îs bûn
Vemiriya guriya çavêt pilingan
Nivandin girtin cardêt nihinga
Xarin vekuştin beta qulinga
Xîn hate xwarê kefte delinga
Biheşta şêra bû behr û talan
Şêr û Rûstemêt welatî ne man
Hemî nivistin ketine nav tirban
Neyara rakir fermana kurdan
Welat nemînim birîn dijwar in
Xoyî biyanî dûpişk û mar in
Kul û birînêt te sed hezar in
Rondikêt çava wek tava dibarin
Talan kir cihê şêr û Rûsteman
Biheşta kurdan tijî kir ji xema
Tazî û şînî ye l'ser çiya û çema
Xudê me bibe nêxoşî ne ma
Welat netirse hezar hezar în
Bo jîna neyara jehrê di mar în
Guriya evîniya te sotîn xarîn..
Nav şer û gurmêna şêrêt har în.

SALIHÊ BAMERNÎ

## PÊNIVÎS

Ofî pênivîs navekî şîrîn e. Di hemî deman de herê doşan e. Pênivîs serbest e, çi bête bîrê dê binivîse. Digerit li hemî cihan, diçite nav miletan; serhatina wan dinivîse, çak û xerabê wan dibêje, şerm naket.

Pênivîs paşînê ev serhindê dibit şîr û mertal le destê xirapan dide.

Ho pênivîso! ge miletê min xir zanî ban tu çend bilind î; nûke derdê xwe dajo te bêjin.

Ah penivîs tu serbest î; çi bilê û bikî jîna te gelek e. Çiko serbest î naberdî, tu dikeviye ber lepên çak û xirapan. Lê navê te her pênivîs e.

Dê hinde caran bêjim, kuro werin wek pênivîsî bibin hîna röînda wî bin da we bibit di nav geliyan, köyan, deriyan, zigê esman de. Da ko pênivîs herê serbest e. Çi dibêjin gelî xwendevanên genc e kurd ?...

E' zanim hon dibêjin aye pênivîsên Xudê bo miletê din daye, hûn kafir in, ber delên: «Pênivîs, pênivîs em nivîsandina kafira nakîn ». Ez dibêjime wan ma Xudê Quran bo çî ne da miletekî din, bo be Meke, Medîne rêkird? Madam em çagên ('ebd) wî ne?... Bo be tîpê tazî şand?...

We diyar e, Xudê çi zeban nizanî xênî tazî, ha? No, we niye; em di nav qarê da usê hûne ber wê fikrê. Xwedê rêkirdiye bir dî zalim, mirovxwer, pûtperest, zendîq bûn, pa le manê ji wan ra Xudê bi tîpê tazî binart.

Madamkî Xudê Mihemd hênda pêxemberan rêkirdiye bo serfiraziya miletê erdên xir çima lêketin û ta bûne, mirov ber sahê miletê furs. Çira? Ma, herçî pêxemberî bebû ber nav miletê tazî dibû. Qatî Xudêtazî xweş tivêt? No, hindî Xudê dizanit çi miletekî xirap in her di nav da pêxember rakird. Herçî bit tiş û kar li wextê xwe de, da em bibîn mirov arîkariya pênivisî bikin.

MÎRZANGO BELBEŞÎNÎ

# ŞEYTANQÛNÎ

— 1 —

« Şey'anqûnî: wekî her miletî li nik me kurdan jî der heqê xerafatan da baweriyek heye. Li goreyî wê baweriyê, hin mirî piştî mirinê radibin. Gava ew mirî navê kijan mirovî hildin, ew jî dimire. Ji bo vê yekê kîjan miriyê ko şeytanqûnî bibe bi merê dikujbin. Ji ber ko dibêjin, şeytanqûnî bê merê bi tu tiştî nayê kuştin ».

Di hejmara Ronahiyê a 14 an da bi navê (terşê şevê) min bendek belav kiri bû. Di wê bendê da min hin xerafeyên ko di nav kurdan da cih girtî jimarti bûn. Şeytanqûnî, ji wan xerafan yek e. Îro min divê çîrokeke qewimî li ser vî navê han binivîsim.

Li Serhedan feqeyên kurdan gelek hebûn. Dema ev feqe digehêştin Mela-camî (navê kitêbekê ye), ji bo pêşvebirina xwandin û zanîna xwe, hinekên wan diçûn Îranê û destûra xwe ji zanayên Îranê ên fêris distandin. Bi vê yeka han di nav heval û hogirên xwe da dilgir dibûn.

Bokeyên vê çîrokê feqe Emer û feqe Hesen, piştî ko Mela-camî xwandi bûn, ji bo pêşvebirina zanîn û standina destûra xwe berên xwe dabûn Îranê, li gundekî bû hûn mîvan û ev çîrok li wan qewimî bû. Ji bo ko xwandevan qenc serwext bibin, emê rê bidin gotina feqî Emer:

Dema em gihêştin sînorê Îranê bi êvara dereng ra em li gundekî 'bûne mîvan. Ji ber ko di gund da ode nîne, gundî mîvanên xwe dibin mizgeftê û her yek ji gundiyan jê ra nan û şîvê dibe. Em jî rast çû hûn mizgeftê. Me bi gundiyan va bi bev ra niméja şîvan kir û hîn me nan dixwarin ko dengê girî û şînê bi ser gund ket. Gundîyên ko ji me ra nan anî bûn bi hev ra ev gotin dikirin:

— Kurê mixtar çû rebma Xwedê!..

— Çi kurekî çak û dilpaqij!. pir jî ne ajot..

— Di topa gund da kurekî welê peyda ne dibû.

Ji van gotinên han me zanî ko kurê mixtar piştî bêkêfiyeke du sê rojan emra Xwedê kiriye û canê xwe sipartiye rubistîn. Bivê nevê hinek ji diltengiya gundiyan hati bû me jî. Nemaze, mirov î li ser rêkê be, di riya xwe da raste miriyan were, ne tiştekî xweş e.

Saetek ne borî ko rîsipiyekî gund ji aliyê mixtar va hate cem me. Ji me ra digot: heke hûnê îşev li ser cendekê kurê mixtar xetmek quran bixwînin, emé cendek bişon û rakin mizgeftê. Mixtar wê di ber westa we va, du zêran bide we. Berê me î li welatê biyaniyan bû û ji me ra dirav diviya bû. Ma qîma xwe bi vê gotinê anî. Piştî saetekê cendekê mirî anîn nik me û ber kes çû mala xwe. Me her dûyan jî destmêja xwe nuh kir û her yekî di hêleke cendek da çok berdane erdê û dest bi xwandinê kir.

Cihê em tê da, mezeleke biçûk, di rex mizgeftê da bû. Ev mezela ko ji du kunên biçûk pê va tiştek di dîwarên wê da tine bû, bi tenê ji bo raketina mîvanan hati bû çêkirin. Pixêrî di nîveka dîwarê enîya dêrî da vêketi bû. Cendek di nava tabûteke textinî da, serî herve agir û ling bi derî da bûn. Me her du hevalan weke kewê nêçîrê li peşberî hev bi dengekî nîvbilind quran dixwand.

Şev gîha bû nîvî ko dengê xirtiniyekê li pêş min hat. Berê, min ne xwast ko bi gubên xwe hawer bibim. Lê pir ne ajot ko ew deng careke din bat. Êdî ji min ra şivîşk çêbû bûn ko ev dengê han ji tabûtê dihat. Ji tirsan, nema çavên min dixwastin li rûpelên quranê binêrin. Min çiqas cehda xwe dikir ko binêrim, herwekî binek bi zor çavên min badine ser tabûtê. Eqilê min li hev keti bû. Heke hevalê min, ne ji pirmijûlayiya wî bûna dê tertilîna min hîr bibira. Lê xwandina bi dengê xurt, ew agahî halê min ne kir. Tu ne çû, careke din dengê xirçînê hi tabûtê ket. Ji her ko vê carê çavê min î li tabûtê bû, livîna dergehê tabûtê ê nîvhizmarkirî bi her çavên min ket. Ji tirsan dilê min, wekî teyrê ko bi dafan dikeve û bol dibe, xwe li ber devê min dixist. Ji ber ko hevalê min feqe Hesen î bi çavekî bû û cendek li bêla çavê kor hâti bû, tiştek ne didît.

Bi bawika nuhkirina destmêjê ez bi derketim derva û min derî di ser feqe Hesen û cendek ra girt û li paş kuneke dîwêr gubdariya balê wan kir. Bistek ne çû ko tabût bi carekê liviya. Hînga feqe Hesen her tişt zanî û zûka revî ber dêrî. Lê mixabin ko derî girtî dît.. Carekê bi hêl rahîşte dêrî û hezand, hînga du sê dengan gazî min kir. Di vê navberê da bû ko cendek xwe qenc tev da û derê tabûtê li ser xwe rakir. Bi rast hêreke ziravqetîn bû. Hema pê ra qerqer (kefen) jî bi ser serê xwe va anî û daxiste bin çengên xwe. Her du çav jê sor û mîna xûnê bû bûn. Kef û kopik bi dor dêv da dihat û hi destan bin tişt digotine feqe Hesen. Feqeyê bi çavekî ji tirsan dîn bû bû. Wî her dixwend û pufe ser cendek dikir.

Lê cihê ko xwandina feqecendek bikuje û wî jê xilas bike; hîn xurtir dikir. Dema cendek

dît ko feqe guh nade daxwaza wî, hema rabû ser xwe û qesda feqe kir û bervê çû. Wê gavê dengekî welê bi feqe ket ko kevir li ber dibûne kerî. Bi lez û bez dîsa derî rahêjand û du sê dengan gazî min kir. Dema min lê venegerand û cendek jî nîzîkî lê kir, hêla derî berda û baz da. Lê kû da biçûyal ji her çar dîwaran derbaz bûn ne mikûn bû. Çiqas cara cendekê reben berê xwe didayê ko here cem, feqe qîrek dida xwe û gazî ji Hezreti şêx dikir. Çi serê we biêşînim; tu ewliya û enbiya ne man ko feqe Hesen gaziyê nekir. Bi her qîrekê ra xwe li diwarekî davête dîwarê din. Pê da pê da feqe Hesen diwestî û cendek xurt dibû. Dawî, cendek feqe Hesen li kuncekî asê kir û girt. Feqe li ber mirinê jî dest bire xwe û kulmek di pê ra li ser çavê cendek da û pê ra xiste erdê. Xûneke ecêb di dev û bêvilên cendek ra avêt û feqe Hesen jî ji tirsan wekî sofiyê bi cerbeze diricifî.

Vê hêreya han dil û hinavên min zîz kirin. Êdî ji mêj va ji sînorê henekan borî bû. Bê ko ji tirsan derî vekim, ez hilkişîm ser xênî û di pixêriyê ra min rahişte destê feqe Hesen û hilkişande jor. Pir ne ma, cendek rabû ser xwe û piştî şehadetê, ji Xwedê ra sipas kir. Paşê bi dengekî bilind holê gazî me kir.

— Gelê biran hûn kû da çûne?.. Ji bo Xwedê be werin cem min.

Hîn min dikirî lê vegerînin ko feqe Hesen destê xwe da ser devê min û got:

— Kuro, ma tu ji riya Xwedê ketiye?!.. Ev cendekê han şeytanqûnî bûye. Ma qey tu nizanî ko şeytanqûnî çi ye? an te divê bibî sebeba serê me!..

Feqe Hesen di gotina han da ne î nebeq bû. Tirsa ko bi ser ketî, ev gotina wî ne dilgîhande warê şermê. Lê tirsa min ne ewçend bû. Ji xwe dema wî û mirî (cendek) hev û din di nava mezelê da dibirin û tanîn, li derve ji pirkenînê zikê min êşiya bû. Hêdika min destê xwe da ser gurmikê û gotê: Ne heweeyî hinde, tirs e. Mirî navê me nizane. Bi destelepê jî, ew yeke û em dudu ne. Bi ser da me xençer hene. Heke dilê wî heye xwe bide ber devên xençeran, bê şik destên me dikarin bilivin.

Feqe Hesen heya wê hingê guh bi xwe da girti bûn û li çavên min dinêrîn. Gava gotinên min qediyan, hinekî ricifî û got:

— Feqe Emer dilê min ditirsiye. Ji wê pê va li nik me mer jî nîne ko pê cendek bikujin. Ma şeytanqûnî bi xençeran dimire?!..

— Çawan? wekî keran dimirin. Lê metirse, dibe ko camêr ne miri be û bi xûnê keti be. He xwe ragire, mêrik xwe bi qîr û zariyan kuşt; ez binêrim ka çi bewala wî ye.

Mêrik her qîr û zarîn bû, bê atlahî gazî me dikir. Min hinekî dilê feqe Hesen rihet kir û ez çûm diyarê pixêriyê. Miriyê me di nîvê mezelê da rawestî û her gazî me dikir. Bi dengekî xurt min gotê:

— Te xêr e û çi dixwazî?

— Bira, ez tiştekî naxwazime. Bi tenê min divê tu werî cem min. Ez ne mirime. Xweya ye ez bi xûnê ketime. Werin yek torpan bidin ko ez li xwe kim û mizgîniyê bidine bavê min û bêjin, kurê te ne miriye. Dê bexşîşeke hêja bide we.

— Ezê çawan bawer bibim ko tu şeytanqûnî ne bûye?

— Te çi divê, ezê welê bikim.

— Qurana min bi tûrê nên va li wir in, heke te dane min, dê zanibim ko tu şeytanqûnî ne bûye.

Mêrik bê dudilî çû quran û tûrê nên anîn û di pixêriyê ra dirêjî min kirin. Hinga dilê min rûnişt ko camêr ne miri bûye û bi xûnê ketiye. Ez rabûm batim jêr û derê mezelê vekir û çûm cem. Piştî ko feqe Hesen bi rihetiya mêrik bawerî anî, bi dudiliyeke mezin hate cem me. Hîn jî carcaran diricifî.

Me her yekî hinek kinc ji xwe kirin û dane mêrik. Tevî bergera wî, ji tirsa ko gundî ne bêjin şeytanqûnî bûye û nekujin, min bi şev haya kesî ne kir. Sibê dema hatin ko cendek berin goristanê, mêrik di nav me da rûniştî dîtin. Êdî şika kesî ji rihetiya wî ra ne ma bû. Piştî ko havê mirî tevdîra min zanî, xwe avête himbêza min û got:

— Heke ne ji tewitîna te bûya, me dê lawik bi destê xwe bikuşta. Mafir ko te lawê min ji vî halî û ez jî ji ara kuştina wî xelas kirim, ezê dilê te geş bikim.

Piştî ko sê rojan em li nik xwe kirin mîvan, bi dilxweşî û rûmet bi rê kirin. Gava em li wî gundî bi rê ketin me heryekî pênc zêrên zer bexşîş berda bûn kîsê xwe.

OSMAN SEBRÎ

---

Kiriyariya Hawarê:
Ji bo Sûriyê 5 lireyên sûri - Ji bo welatên din lireкî ingilîzî
Xwedî û gerînendeyê bepirsiyar: Mir Celadet Alî Bedir-Xan, Şam—Sûriye
Directeur Propriétaire: Emir Djéladet Aali Bedir-Khan, Damas-Syrie

ŞAM — ÇAPXANA TEREQIYÊ — 1943

SAL 11
HEJMER 56
PÊNCŞEMB
15 TÎRMEH 1943

# HAWAR

ANNÉE 11
NUMERO 56
JEUDI
15 JUILLET 1943

KOVARA KURDÎ ✶ REVUE KURDE



## TEFSÎRA QURANÊ

31 — Minêkariya dewlemendî û siûda xelkê ko Xwedê bi wan hinan ji hinên din dewlementir û bextiyartir kiriye, ne kin. Dest ji hesûdiya xurtî û xweşhaliya mirovan berdin. Mêr ji qenciya xwe û jin jî, ji qenciya xwe behirdar in. Lavekarê kerem û comerdiya Xuda bibin; Xuda her tiştî dizane.

32 — Me mîratxwerên dê û bav û mirovên di wan û destbirayan şanî we dan, ji mîratê parên wan bidin û bizanin ko Xuda her tiştî dibîne û şahidê wan e.

33 — Mêr bi tevdîr, sebr û giraniya xwe û bi]dana mehr û nefeqeyê jinan, ji wan zêdetir in û Xuda mêr kirine çavnêrê jinan. Jinên çak ji Xudayê xwe tirsiyar in, qedrê mêrên xwe digirin, gava mêrê wan ne hazir in, her weki Xuda ew parastine, ew jî wiha bi dilpakiyê nefsa xwe ji gunehan û malê mêrê xwe ji xirabiyê diparêzin.

Heke hon ji asêbûna jinên xwe ditirsin, şîretan li wan bikin, ko wan guh ne da, bi nexeberdanê an bi nenizikbûna wan, wan birencinin û ko disa dest ji serhişkiyê bernadin, wan biêşinin; lê heke wan dest ji serhişkî û serkeşiyê berdan di sûçên wan biborin û bizanin ko yê mezintir Xuda ye û Xuda ji zilm û xedrê hez nake.

34 — Gelî bawermendino.... Heke hon dibînin ko, jin û mêr bi hev nakin û hon ji hev bûna wan ditirsin, ji mala her diwan, navbiran bişînin ba wan, da ko ew bi destûr û kerema Xuda, wan li hev bînin; Xuda bihistiyar û fêris e.

35 — Ji Xudayê xwe re perestişê bikin û tu kesî mekin hevber û hempayê wî. Gelî bawermendino.... qedrê dê û bavê xwe bi her awayî bigirin, dilê mirovên di xwe û sêwiyan xweş bikin, ji parsek, belengaz, rêwingî û ciranên xwe ên dûr û nizik re — ew mirovên di we bin an ne — arîkariyê bikin, xweşhaliya wan bixwazin; hevalê hevalên xwe bibin, dilê xadim û xulaman meşkinînin, wan 'meêşînin, û bi wan re comerd bin. Xuda ji nefesmezinan û ji yên ko fortê xwe didin hez nake.

36 — Yên ko çavteng û destgirtî ne û li xelkê şîreta çavtengî û destgirtîtiyê dikin û nîmeta ko Xuda da wan vedişêrin, divê bizanin ko ji bo kafiran ezabekî dijwar heye.

37 — Yên ko ji malê xwe, seba dîtina xelkê bi riyakariyê comerdiyê dikin û baweriya xwe bi Xuda û bi axiretê nayênin, wan ji xwe re şeytan kiriye heval, şeytan çi hevalekî kirêt e.

38 — Ma çi dibû, heke wan baweriya xwe bi Xuda û bi roja pişdawiyê bianiyana û ji malê ko Xwedê da wan, di riya Xuda da bidaya? Xuda wan û veşartiyên dilê wan nas dike.

39 — Xuda ji tu kesî re neheqiyê nake û Xwedê qedrê qenciyeke piçûk jî, digire û ji kerema xwe, ji xwediyê wê qenciyê re, sewabeke mezin dide.

— 2 —

## SÖR CÊMS YÛNG SIMPSON

**« SIR JAMES YOUNG SIMPSON 1811—1870 »**

Heke stiriyek di tiliya me ra bû û hevalekî me dike wî bi kêra xwe rake em rûyê xwe dişemixînin, diranên xwe li hev dişidinîn û bê sebr û qerar dixwazin zûka ji destên hevalê xwe xelas bibin. Çire? Ji ber ko em têşin û êş tiştekî giran e.

Lê yên ko di xestexanan de zikê wan diqelêşin, dest an lingekî wan dibirin, heke ne hatana benc kirin ewê çi ezab bidîtana. Em îro dibêjin ewê çi ezab bidîtana. Ji ber ko îro tu ezabî nabînin. Lê berê wan ezabine giran didîtin. Ji ber ko hingê benc nîn bû û emeliyat dest û lingên nexweş girêdayî û gelek caran ew hi xwe bi masa emeliyatê ve girêdayî çêdikirin. Lê îro xêra Simpson di wextê emeliyatê de nexweş bi tu tiştî nahesin; çavên xwe digirin û dikevin xeweke giran.

Berî sedsalekê di xestexaneke Ingilîstanê de şagirtekî tibî emeliyat dikirin. Şagirtê reben dida ber qîran û di nav ezabine giran de xwe ditewand. Li ber serê wî xortek sekinî bû û lê temaşa dikir. Wî xortî di dilê xwe de digot: « Ma gelo îmkan nîne ko mirov di wextê emeliyatê de dilê nexweşan ji bîr ve bibe û wan binivînîne da ko bi êşên emeliyatê nehesin ».

Ev xort Cêms Yûng Simpson, ji gundê Baskêtê, kurê nanpêjekî bû.

Cêms piçûkê heft bîran bû û di sala 1811an di meha Hizêrnê de ji deya xwe bû bû.

Cêms di dibistana gundê xwe de xwend û gava bû çardesalî çû Êdînbûrgê. Gundê wî nîzingî wî bajarî bû; jê bi bîst kîlomêtiran dûr. Cêms ji gundekî piçûk keti bû bajarekî mezin. Li ber çavên wî Êdînburg bajarê dinyayê ê meztir bû. Cêms bi xwe di xatiratên xwe de dibêje: « Ez piçûk, feqîr û hov gihaşti bûm Êdînbûrgê. Min tukes nas ne dikir ko sebira xwe pê bînim ».

Cêms ji hêkesiyê zûka bêriya gundê xwe kiri bû. Kiri bû ko vegere gundê xwe. Lê gava rabûn salê bi pêncî dolarî arîkariya wî kirin dev ji vê fikirê berda û xwe da xwendinê; ket dibistana tibiyê. Di sala 1830î de, hêj nozdeh salî, Cêms şehadetnama hekîmiyê girt û bû Dr. Simpson.

Cêms hêj 26 salî bû ko deng pê ket. Heçî gundiyên dora Êdînburgê hene dihatin balê û Dr. Simpson gundiyên feqîr herwe derman dikirin. Du salên din ketin navê û Dr. Simpson di tibiya Êdînbûrgê de bû seyda.

Di sala 1847an de Dr. Simpson di Skotlandê de bû bijîşkê melîke Vîktorye. Piştî vê tayînê Simpson xwe yekcar da keşifa bencê.

Di sala 1846an de Dr. Simpson seh kiri bû ko bijîşkine emêrîkanî ji bo nivînandina nexweşan tecrîbeyina çêdikin û bi esîrê dilên nexweşan ji bîr ve dibin. Berî ewilî ev tişt gelek bi talûke bû, yanî nexweş carina pê dimirin û ji aliyê din hisên mirov bi temamî ne dihatin razandin.

Simpson diviya hû tiştekî welê peyda bike ko nexweş pê yekcar bêhiş bikevin û lê tu talûke nîn be.

Di sala 1847an de Simpson texlîtek kongrê çêkir û bijîşkine welêt lê ezimandin. Simpson ji hevalên xwe re nezeriyat û tecrîbeyên xwe dan zanîn. Piraniya hevalên Simpson bi gotinên wî qaîl ne bûn; lê jê re gotin, Xwedê ji te re li hev bîne û xebata te bibe serî.

Simpson hero li ser nefsa xwe tecrîbeyine giran û bixeter çêdikirin û xwe dixist talûka mirinê.

Dostekî Simpson hebû, jê re digotin Léon Blaygar. Dr Blaygar kîmyagerekî serdeste bû. Simpson rojekê çû bû ziyareta dostê xwe. Dr. Blaygar jî wek Simpson bi keşifa bencê mijûl dibû. Wê rojê Dr. Blaygar dikir ko tecrîbekê çêke. Simpson gava pê hesiya ji hevalê xwe re pêşmihad kir ko benca wî li ser nefsa xwe biceribîne. Blaygar pê qaîl ne bû û got, berî ewilî em wê li ser kêvroşkan biceribînin. Rabûn du kêvroşk anîn û ew derman bi wan dane bibin kirin. Her du kêvroşk bêhiş raketin.

Simpson gava ev netîce dît gelek kêfxweş bû û gote miawinê xwe, de were em jî ji vî dermanî bibin bikin.

Miawinê wî pê qaîl ne bû; lê vegerand û got: « Ka em bibînin ewê çi ji kêvroşkan bibe; piştre.... »

Midekî li hêviyê man; kêvroşk bişyar ne bûn, mirin. Ji miawinê wî ne biwa bê şik Simpson jî wê biketa xeweke welê ko jê nema hişyar.

Çarê Çiriya-paşîn sala 1847an bû. Di lebotwara Simpson de du bijîşkên din hazir bûn. Dr. Keyt û Dr. Donkan, her du jî miawinên wî. Stimpson benceke nû çêkiri bû û diviya bû wê biceribîne.

Lê tecrîbe ne li ser kêvroşkan, lêbelê li ser nefsa diktoran bi xwe dê bihata çêkirin. Dr. Keyt dest pê kir û qederek ji wî dermanî bihin kir. Piştî du deqîqan Keyt bêhiş keti bû erdê. Simpson û Donkan da bûn pey. Her sê bijîşk bi encameke nenas ve xwe li erdê dirêj

# ŞEYTANQÛNÎ

— 2 —

Di binhêla Îzolê-bendê û serhêla Şîroyê da li pal û qûntarên çiyê gelek gundên biçûk hene ko rûniştmanên van gundan ji 10-15 malan pirtir nabin. Di van gundên han yekî da bi navê mala Ebês çar bira hebûn ko bi qenciya ji hev ra, di nav gundên dorhêlê da hati bûn nasîn. Ên ko çakî û dilovaniya wan ji hev ra dîtî, tevî zîvariya wan dikari bûn bêjin ko her çar kurên Ebês bextiyartirên xelkê wî cihî ne. Tevî ko ev birayên han ji hev cida rûdiniştin, malên wan ji hev ne dihatin nasin. Mirov bîçûya mala kîjanî ji wan; birayê din tê da didît, an bi hev ra li nav zeviyekê di xebatê da didîtin.

Her wekî felekê ji kesî ra dûm ne kiriye; an mîna ko kurd dibêjin: çira kesî heya sibê vêketî ne maye, rojekê bi mirina biçûkê biran kiri bûn. Ji zindiyan bêtir diman miriyan. An ewê vegeriyana jînê û însaniyet ji êşa emeliyatê dê xelas biwa an her sê jî di xizmeta însaniyetê de dê qurban biçiwana.

Di wê demê de jina Simpson digel keça xwe û xwarziya diktor deriyê leboratwarê vekirin û ketin hundir. Gava her sê peya li erdê dîtin nizanî bûn çi bikirana, bi çi awayî arîkariya wan bikirana. Lê ji xêra Xwedê re gelek ne borî Simpson çavên xwe vekir, rabû ser xwe û ji peyan sekinî. Hevalên wî jî pê re.

Simpson xebata xwe biri bû serî; êdî nexweş ji ber emeliyatê ne direviyan û jîna gelek mirovan xêra bencê wê bihata xelas kirin.

Lê wek her tiştî keşifa nû benca Simpson jî kete ber ekisa hinan. Ewçend ko hinan digot benc mixalifî diyanetê ye û istîmalkirina wê guneh e. Lê bencê bi xwe, bi rehakariya xwe cihaba wan dida û rastî, bi gavine mezin pêş ve diçû.

Dr. Simpson yê ko ji êşa xelkê re derman peyda kiri bû di dawiya emirê xwe de bi nexweşîke welê ket ko şev û roj jê têşiha.

Dr. Simpson di sala 1870î û li 6ê Gulanê de çû rehmeta Xwedê. Qralîçe Viktoryê emir kiri bû ko wî di gortistana Westminsterê, gormistana şeh û şehinşahan de veşêrin. Lê ji ber ko di wesiyetnama xwe de cihê veşatina xwe şanî da bû Stimpson li Wirstenê hate veşartin.

Îro xêra vî ingilîzê mezin zikê mirovan diqeleşin ûr, kezeb, û gurçilikên wan dibirin, didirûnin û nexweş beta dawiya emeliyatê bi tu tiştî nahesin.

HEREKOL AZÎZAN

Alo şîn û girî, riya xwe êxiste mala kurên Ebês Hîn ro negîha bû nîveka ezmên ko bi arîkariya cînaran cendekê Alo siparti bûn axa sar û kêleke bilind di hêla sêrî da daçikandi bûn. Birayên Alo jî, piştî ko li ser gora birayê xwe vegerîn; bi mêvanê serxweşiyê mijûl dibûn.

Di nava wê malbatê da a ko agirê veqetînê dil jê sotî û peritandî, ji hemiyan pirtir, jina Alo a ciwan Zêzê bû. Dema tiyên wê bi mîvan û cînarên ko hatine serxweşiyê mijûl bûn; wê biçûkê xwe ê yeksalî dabû ber himbêza xwe û jê ra li ser sêwîbûna wî dinehwirandin. Ji ber ko nexweşiya Alo ji du rojan pirtir ne ajotî bû; mirina wî ji Zêzê ra mîna ecêbeke nedî û nebînayî dihat. Piştî ko êvarê perên xwe ên reş di ser dinê ra vegirtin û hemî tinawiran xwe avêtine xewgehên xwe; Zêzê çaxe di ber himbêzê, ew jî di ber êrgûn da, şîna Alo ji nû va bi ser xisti bû. Heya şev gîha bû nîvî, Zêzê bîstekê ji girîn û kizînê vala nema bû û geh gotin davête ser peyayê malê (Alo) û geh tanîn ser biçûkê salê (kurê wê ê yeksalî û berhimbêz).

Şev gîha bû nîvî ko li paş dêrî dengek bi guhê Zezê ket; navê wê hildidan û digot:

— Zêzê, were dêrî veke ez hatim.

— Tu kî'yî ko ez dêrî vekim ? !

— Ez Alo me. Ma tu dengê min nas nakî ?..

— Wey qeda bi te û bavê te keve; tu bi mirinê nemayî, şeytanqûnî jî bûyî ? ! ....

* *
*

Ji bo ko em bizani bin, Alo çawan ji gorê bi derketiye û piştî ko hatiye paş dêrî çilo gazî jina xwe kiriye, çi lê qewimiye; divê em rê bidin gotina wî.

Dema çîrok gîha vê derê, piştî ko kenekî tehil riya xwe bi rûyê Alo xist, çend gepên xurt ji qelûna xwe kişandin û got:

— Bê şik min bîra mirina xwe û kûrayiya gorê ne dibir. Hew min dît, bêvilên min şewitîn û aveke germ û nerm bi ser dev û sînga min da herikî. Min hinekî xwe tev da, cihê ko ez î tê da î teng û tarî bû. Tu ne çû min dît bêhna min jî çikiya. Hînga min bîr bir ko ez î di gorê da me. Min zûka qerqes bi ser xwe va anî ko di jêr va bi vekirina gorê mijûl bibim. Lê gava Xwedê bixwaze yekî ji tengiyê bi derxe, bê west jî dike. Hîn min destên xwe li tehlên ser xwe negerandi bû ko pê ra teqayek di tala serê min da vebû û bayekî sar di pê ra li nav çên min ket. Ronahiya hîvê siya cinawirekî bi ber çavên min xist. Ji ber ko teqa di ser serê min ra e fere bû, min nîvê cendekê xwe tê ra bi der

xist. Cinawir ji min tirsî û baz da. Heke ez ne î şaş bim, hirç bû.

Bi gengazî ez ji gorê bi derketim. Min qenc bala xwe dayê, gor hati bû vedan. Dawî çi dibe ez ji gora teng bi derketim û min qerqer ( kefen ) li nava xwe pêça. Xûna ko ji bêvilên min hati bû dest, pîsîr û qerqerê min reng da bû. Tevî ko min serçavên xwe ne didît, her hal min dizanî ko wek ê cinawirên leşxwer bûye; lê bê ko ez li şûştinê bifikirim, li nav goristanê, min berî da mal. Gava ez gîhame paş derî, dengê giriyê jina min dihat. Hîngê ji min ra şik ne ma bû ko jina min gelekî hej min dike. Lê gava min gaziyê kir û ez nasîm, bi carekê dîn bû û ji riya Xwedê derket. Wê dizanî ko ez şeytanqûnî bûme. Çiqas ez di ber geriyim bê feyde bû. Hînga min xwest ko derî bişkênim û di hundir kevim. Ji ber ko her du rojên nexweşiyê ez pir qels xisti bûm, beya min derî rahêjand; Zêzê darekî zexim qeraseyî paş dêrî kir. Êdî xwe westandin tewş bû. Piştî ko bi bergerê ne bû; min dixwast, Zêzê bi gurintiyan biqeflînim. Bi vê ramanê bû ko min gotê:

— Keça malmêratanî ma qey tu dizanî ko ezê nikari bim werim. Heke derî ne bû ezê di pixêriyê ra dakevim.

Bi vê gotinê ra min derî berda û çûme ser pixêriyê. Heya min xwe di pixêriyê ra berda, Zêzê derî vekir û bi nava gund da revî. Min dizanî ko reva Zêzê wê çi belayê ji min ra bîne. Vêcar min qerase li paş derî asê kir, lê pir mikûn bû ko ew jî weke min di pixêriyê ra dakevin. Tiştekî ko min xwe pê biparasta diviya bû. Min serekî dora xwe çav kir. Dergûşa kurê min ê yeksalî bi ber çavê min ket. Bê ko zarok bitirse min hîdîka rakir û da himbêza xwe. Berî wê demê tucaran ne dihat bîra min ko bira û pismamên min wê bixwazin min bikujin, lê bi xêra vî gedeyê biçûk ezê ji mirinê bifilitim.

Hîn ez ji van ramanan kuta ne bû bûm ko dengê bira û pismamên min hat. Berê xwe dane derî û zor kirin. Zêzê digot: Qerase daye paş dêrî. Hûn dikarin di pixêriyê ra dakevin cem wî.

Tu nema hemiyan xwe di pixêriyê ra berdane xênî, her yekî merek bi dest da bû. Êdî mecala raman û tevdîran nema bû. Hema min pişta xwe êxiste quncekî û biçûkê bi dest xwe da ji devê merên wan ra kire armanc. Di kîjan hêlê va ko devê merekê dirêjî min dibû, min cendekê biçûk dida ber û digot:

— Heke dilê we bi min naşewite qene bila bi biraziyê we bişewite.

# DÎWANA MELÊ

— 44 —

Şahîdê cilwe nima qudsiyê fêrûze libas
Heçî rengê te nîşan det tu nîşanê xwe binas
Husin bê ayîneyê eşqê tecel-lî naderit
Eşqê mehmûdî di me'na nemekê husnê eyaz
Herçî rengê te bivêtin xwe bibînî lil-lah
Nezerê wer bide kasê çi xweş ayîneye kas
Tu şerabê bi xurabê bi nehingan bide mey
Dê kifayet bi çi rengî me bikin koze û tas
Remz û razê ney û nayê ko sinaî ne hemî
Ji mihalane bi eqlê xwe bizanî ji qîyas
Wê biket mezlete her dem li herîfan bi cedel
Bi du caman ji xweyên sîretê ebyed û weswas
Destegîrê te ne bit Xidrê înayet ji qedem
Nangehê aba heyatê bi du esker Ilyas
Tu binê mahê nû û destê qezayê hey û hêy
Ne li zer'ê felekê belkî li umrê me ye das
Turkê xûnrêj û xunarê me bi yek xemzeyekî
Zuhdê çil sale li min zêr û zeber kir ji esas
Ji lebê le'lê şekrbarî qe nekir pirsek melê
Misriyan gezme reşandin ko kişandin elmas

---

Zarokê biçûk ji barbar û qîrêna dengê me pir tirsî, ew jî bi hêl û deng digiriya. Vêcar Zêzê ne ji tirsa canê min; lê ji tirsa ko belanin ji kurê wê ra çêbin her carê xwe davête ser destê yekî û pê em diparastin.

Piştî ko nîv saetê me li ber hev da bi şûn da, bi navê Qasim cînarekî me jî bi gelş û qîrêna me ra hişyar bû û hat Dema Qasim kete hundir, min gaziyê kir û gotê:

— Qasim! bira û pismamên min dîn bûne û dikin min bikujin. Ma bûn jî bê namûs bûne ko deng nakin?! Piştî ko vana min li ber çavên we bikujin, xelk ê ji we ra çi nebêje?..

Gotina min li Qasim pir kar kir ko xwe avête pêş û got:

— Gelê cînaranî hûn hemî ji xênî bi derkevin; girtin û kuştina vî li min.

Bi gotinê ne ma û hat bira û pismamên min hemî di xênî da bi derxistin û paşê di ber êrgûn da runişt û gote min:

— Heke te divê, zarok têxe dergûşê û were ber êgir da em binekî bipeyivin:

Ji xwe biçûk ji tirsan ji xwe çû bû, min ew danî dergûşê û çûme ber êgir û li pêşberê Qasim rûniştim. Piştî dayîn û standineke kurt Qasim bawer bû ko ez şeytanqûnî ne bû me û bi xûnê ketime. Hînga gazî bira û pismamên min kir. Her yekî ko dihate pêş min, ji şerman bi erdê da diçû, êdî nema dikari bûn li çavên min binêrin; her bi merên di dest xwe da erd dikolan.

Hele Zêzê, heya çend mehan ser-rast nikari bû ber ve min binêre.

OSMAN SEBRÎ

# MÊŞHINGIVÎ

Di Kurdistanê de li cihê Botan, li Qeza Şernex eşîrek heye navê wê eşîra kendaliya ye. Eşîreke gelek piçûk û hindik e, hi xweyîkirina pezê- çûr û bi dihindana wan gelek meşhûr û bi nav û deng e. Lê nemaze û sê behran bi pispûrî û serve-bûna mêşên hingivî hêj meşhûrtir û bi nav û dengtir in.

Herwekî ez bi xwe di sala 1938an de wextê li welêt bûm ez û çend mirov û pismamên xwe li gelî û niwalên çiyayê pişta Şirnex digerayîn. Me dît ko çend zelam ên bi gopal, das, bivir û çelte bi milîve wê li nav kelehestan de, giya, kuç û ferşan de digerin û tên û diçin.

Wextê min holê dît min ji wan pirs kir; pismam ma çi li hewe qewimiye ko hûn vê spêda hinde sar û cemidî li nav van giyan û vê erda xwîsgirtî û şil digerin tên û diçin.

Gotin: pismam aniha tu dibînî dinya îro Bihar e û erd hemî kesk û heşîn bûye. Vêca wextê mêşên hingivîye; mêş hingivî hingiviyê xwe dikin çêkin. Ji lewre em ho kin ev li me qewimiye.

Îca min ji wan re got: ka xêra xwe niha ji min re bêjin ka hûn çawan çêdikin û dizanin û serve dibin.

Gotin: Biha're pismam, mêşên hingivî dê bên li erdê têr av, gul, kulîlk û giya bigerin û danin, têr avê vexwin û ji gul, kulîlk û giyayên bi bihin û bihindar barikên xwe çêkin û bi lingên xwe ve girêbidin û bişidînin, bifirin û paşê biçin mal û cihê xwe û hingiviyê xwe çêkin.

Vêca em jî dê bên li wan bigerîn û hêre bikîn. Wextê me holê dîtin emê xwe li hîviyê bigirîn heta firîn, û çûyîn. Heke me dît nivz fitlekê an du fitlan firîn û çûn hingê em dizanîn cihê wan nîzîk e û ne dûr e. Heke me dît sê çar fitlan bilind bû û xwe dewir da û firî bingê em dizanîn cihê wê dûr e. Dibit ko riya saetkê hebît emê lê bigerin û pê biçîn; heta em vêdikevin û serve dibin. Vêca emê tîj û hûr lê binêrîn ko berê xwe kû ve da û çû. Emê xwe bi wê hindamê bigirin û herin. Em winda nakîn heta em rast biçîn ber devê qula wan bisekinîn: vêca emê dest birîna mêşa xwe bikîn; mêşa xwe bibirîn, hingiviyê xwe jê derêxîn û biçîn mala xwe.

Dibêjin rojekê Mihemed begê mîrê Botan li zozanê Herekolê bû; ji civata xwe re got: Me divêt em vê hefteyê herin seyrana xwe li Kêla-Memê bikin.

Kêla-Memê zozanê goyan e; gelek bilind û xweş e; pez gelek lê qelew û xurt dibin. Çiya û avên wê gelek bi xêr û bêr in.

Rabûn kar û barê xwe kirin, xwe pêk anîn û çûn li Kêla-Memê danîn û dest bi seyrana xwe kirin.

Mîr Mihemed digel civata xwe li nav mêrg û çîmenekî têr av û giya de li ser kaniyeke sar û cemidî rûniştin. Dîtin ko mêşek ya hingivî ji jor de hat û li ser avê danî.

Di nav civata mîr de zilamekî geverî hebû. Gever gundek li cihê Botan, li qeza Şernex, li qûntara çiyê û zozanê Çiravê ve ye.

Wî zilamê geverî got: Mîrê min ev mêşa he ya hingivî mêşa min e û ji gundê min Gever hatiye.

Mîr got: Te çawan zanî ko mêşa te ye?

Zilamê geverî got, ez dizanim ya min e. Ka em rabin biceribînin. Heke mêşa min derneket bila mîr serê min lêbidit.

Rabîn mêş girtin û piçik ermîşim bi lingê wê ve girêdan û berdan. Mêşa gewir firî, çû.

Mîr rabû xulamekî xwe î rast û dirist digel mêrikê geverî rêkir. Her du vêk re çûn. Geverê; li ber dinbaşka mêşan rûniştin. Dîtin ko ew mêşa nîşankirî di ser gurbika xwe re difirit.

Vegeriyan nik mîr û mesele jê re gotin. Mîr ji geverî pirsî: Te bi çi rengî zanî ko mêşa te ye?

Mêrikê geverî got: Mîrê min gava min dît mêş rabû û bilind bû û xwe dewir da û berê xwe da nişîv û bilind firî; hingê min zanî ew mêşa min e.

Mîr rabû geverî xelat kir.

M. E. BOTÎ

*JI BÎRÊN ROJÊN KEVIN:*

# KEÇA ŞI'RÊ

Bû çil roj ko min tu li pêş xwe nedî
Me can çû ji derdan were ca gidî
Xwedê ez êxistim qurek bê jimar
Bo dûma jîna min hinartî tu par
Dema xem didin pêl ji derya ê dil
Diçin tên di rehan tivanc tîr û kul
Wê gavê î sews im, bijîşkek çeleng
Divê dil şiyar ke bi daxên pereng
Te nadim bi Leyla û şîrîn Zînan
Bi te ez ez im hêl mizgefta dînan..
He fermû were pêş du pirsan bibêj
Me bexşa ji bo te dil û can ji mêj
Yarê me Rondo kes ne hişt giş kirin
Destgirtî ji bo te anê şair in!..
Ji ber ko sêrser bûn û bê war û şûn
Ji lewre biskên te di talanê çûn
Zînatek mezin bû li min û te yar
Ji bîr va nakim qet vê êşê tu car.

Heles 11-2-934 OSMAN SEBRÎ

ÇIROKEKE MISIRA KEVIN:

# KITÊBA TOTÊ REB

*Eslê çirokê li ser papîros (1) nivîsandî haliye dîtin*

« BERIYA ÎSA PÊXEMBER BI 1300 SALÎ »

« Ez Ahûre me, keça melik Menib-Betah. Zilamê li ber min rûniştî ew jî birayê min Ninûferk-Betah e. Em her du, ji dê û bavekî bûne. Dê û bavê me ji me pêve tu wêrt nîn bûn.

Wextê ez gihaştim çaxê ziwacê diya min ez birim hafa melik. Ez hingê spehî û bedew bûm.

Melik got: Li keça me Ahûrê temaşa bikin; bûye jin. Wextê ziwaca wê ye. Emê wê bidin kê?...

Min gelek heji birayê xwe dikir û min dixwest ez wî bikim. Min diya xwe serwext kiri bû. Diya min rabû, gote melîk:

— Ahûre ji birayê xwe hez dike. Li gora adetên me divêt em wan bi hev şa bikin.

Melik lê vegerand û got:

— Te bi tenê du zaro hene. Çire dixwazî wan bi hev re bizewicînî. Ma ne çêtir e ko em Ahûrê bidin kurê serdarê me û ji kurê xwe re keça fermandereki din bînin. Bi vî awayî tu keç û kurê xwe bi bûk û zavakî zêde dikî.

Diya min bi xeyd lê vegerand û got:

— Tu bi min re cedelê dikî, ji ber ko min bi tenê du zaro hene. Lê tu ji bîr diki kô adet dixwaze em bira bi xwêhê re bizewicînin.

Firewin gote wezirê qesirê: Îşev Ahûrê bibin qesira birayê wê û ber celeb perû û diyari pê re.

Ez çûm qesira Ninûferk û bûm jina wî. Firewin emir kir qewmê xwe. Dawêta min şahînet kirin û ji min re xelatine giranbeha anîn.

Ninûferk rojê pê de mêvan dihewandin û bi şev bi min re dima.

Kurikek ji min re çêbû. Yê ko li rex min rûniştî ye. Me navê Mêhit lê kir. Ji kêfa firewin re payan ne dihate ditin.

Mijûlahiya Ninûferk gera di nav tirban de bû. Ninûferk diçû Mênfîsê di nav tirban de digeriya û kêlên firewinan dixwendin. Li tabûtên wan hûr dibû; li xetên sêhrê yên ko li wan bûn hûr dibû.

Rojekê ji peresto Betah re ayinek çêkiri bûn. Ninûferk ji pardariya ayinê kiri bû. Piştî nimêjê bi ayinvaniyan re gava vedigeriya, li ber tirban disekinî û kêlên wan dixwendin.

(1) Texlîtek giya heye jê re papîros dibêjin. Misriyên kevin li ser pelên wî giyayî dinivîsandin.

Kalekî çav pê kir û kenî. Ninûferk jê pirsî:

— Tu çire li min dikenî

Wî kalî lê vegerand û got:

— Ez li te nakenim. Lê gava ez dibînim ko tu têî van deran û van xetên kêm û jar dixwînî kenên min tên. Heke tu dixwazî tiştek[1] hêja bixwînî bi min re were ezê te bişînim derekê û li wê derê kitêba ko Tot, gava dakete erdê, bi destê xwe nivisandiye bixwîne.

Di wê kitêbê de du neşîde hene. Heke te a pêşîn xwend erd û ezman, şev û roj, av û çiya tev de dikevin bin sêhra te. Tiştên ko teyr û mar dibêjin seh dikî û di biniya behiran de çûn û hatina misiyan dibînî.-

Dema ko tu neşîda diwemîn bixwînî tu dikevî şikilê ko piştî mirinê pê bikivî. Di ezmanan de rojê bi mewkiba xwe a rebanî û hêvê di şikilê xwe ê rastîn de dibînî.

Ninûferk — Bi serê milik ji min re bibêje ew kitêb li kû ye. Tiştê ko devê te digire ji min bixwaze...

Kalo — Min ji te sed polikên zêr û du tabût divêtin; ji tabûtên ko ji bona kahînên dewlemend çêdikin.

Ninûferk emir kir sed zêr dane kalo û du tabût ji jê re çêkirin.

Kalo got: Kitêba ko ez dibêjim di orta Nil, di Qeftê de ye. Kitêb di nav çend sendûqan de ye. Sendûqeke hesinî, tê de yeke tûnc, di nav tunc de yeke ji dara qurnefilê, tê de sendûqeke ebanos, di nav wê de yeke zîvin, di nav zîvîn de yeke zêrîn û kitêb di nav sindûrika zêrîn de.... Di dora sendûqê de dûpişt û marin hene, di nav wan de şehmarek jî heye. Ew hemî hefadiya sendûqê dikin.

Ninûferk ji perestişgahê vegeriya nik nim, çiroka kitêba Totê reb ji min re da zanîn û bi ser ve zêde kir:

— Piştî ko min kitêb bi dest xist ez nema terka erdê bakur didim.

Min kir ne kir, birayê min ji fikira xwe ne geriya û qesta firewin kir û çiroka xwe jê re got:

— Ji bo wê yekê ji min re sefîneyek divêtin. Ezê xweha xwe Ahûrê digel kurê wê Mêhît bi xwe re bibim.

Firewin sefîne da wî. Em lê siwar bûn û me berê xwe da Qeqtê. Kahîn û serkahînê Îzis tev de derketin pêşiya me û hatina me şahînet kirin. Em daketin bejê û çûn ziyareta mabeda Îzis. Ninûferk ji Îzis re gayek û qazek qurban kir. Qedera çar rojan em bûn nêvanên wan. Birayê min ziyaretên xelkê welêt qebûl

dikirin. Herçî pîrekên wan dihatin nik min.

Roja pêncan Nînûferk hinek şima xwest. Jê re şimake safî anîn. Nînûferk rabû ji şemayê sefîneyek digel bêr û deryavanan çêkir û lê xwend. Sefîna şima a heftilî bû sefîneke rastîn û deryavanan ew di avê de livandin. Birayê min lê siwar bû; deng li deryevanan kir û got: « Berê min bidin cihê ko kitêb lê ye ». Berê wî dan cihé kitêbê û Nînûferk ji me veqetiya.

Piştî sê rojan gihaştin sendûqa ko kitêb tê de bû. Di dora wê de bi hezaran mar û dûpişt hebûn. Nînûferk diayek xwend û li wan pif kir. Tev be bêhiş ketin; ji şehmêr pê ve. Şehmêr serê xwe hildida û dirêjî birayê min dikir. Nînûferk şehmar bi şûrê xwe kir du kerî. Lê gelek ne borî her du kerî gihane hev û vê carê mar di şikilekî hêj bi heybetir de vejiya. Nînûferk dîsan ev kuşt; mar dîsan vejiya. Li cara siseyan Nînûferk gava mar kire du kerî û çend mist qûm xistin navbera her du keriyan. Vê carê mar bi temamî mir.

Nînûferk bal sendûqê ve çû. Pev hev senduqên hesinî, tûncîn, darên darçîn û ebanos û yên zîvîn û zêrîn vekirin. Kitêb di nav sindûrika zêrîn de bû.

Nînûferk kitêb vekir û neşîda pêşîn xwend. Erd û ezman av û ax sêhirîn. Nînûferk tiştên ko teyr û mar digotin seh kir; di kurahiya behirê de masî û cenawirên behirê tev de ditin.

Nînûferk neşîda diwemîn xwend. Roj û hêv û stêr ketine mewkibeke biheybet û di şikilên xwe ên rastîn de lê xuya bûn. Bi xwe jî keti bû şikilê ko piştî mirinê pê biketa.

Nînûferk kitêb hilanî vegeriya şikilê xwe yê vê diniyayê û gote deryavanan: « Min bibin nik Ahûrê ».

Piştî sê rojan gihaştine erdê ko ez lê bûm. Ez di keviya avê de li hêviya wan bûm: nîv mirî. Sê şev û sê rojan min ne xwar, ne jî vexwarî bû. Ez çûm pêşiya wan û min gote birayê xwe:

— Bi serê melik bikî, ka wê kitêbê, kitêba ko me ji ber wê ewçend zehmet kişandine, bide min; ez lê temaşa bikim.

Nînûferk kitêb gihande destên min. Min her du neşîde xwedin. Bi min re jî herwekî bi birayê min re çebû bû, bû.

Birayê min rabû çend pelên papîrûs anîn û her du neşîde li ser wan nivîsandin. Nînûferk paşê kasek şerab anî û pelên papîrûs tê de helandin û şerab vexwar. Bi vî awayî her du neşîd herf bi herf, pirs bi pirs jî ber kirin.

Di roja xwe de em vegeriyan Qeftê û me li cem Îzis şahîneteke mezin çêkir; pez şerjêkirin û xelk ezimandin. Paşê em çûn û li sefînê siwar bûn.

Lê li ser tiştê ko li kitêba wî qewimî bû agehî bi Tot keti bû. Tot rabû giliya birayê min li cem Ra, Rebê Rojê kir û got:

— Nînûferk-Betah; kurê melîk Menîb-Betah, qanûn û şerîeta min nehibandiye. Pê li meskenê min kiriye, sendûq û kitêba sêhirê biriye, pasvanê ko lê miqate dibû, kuştiye.

Rebê Rojê lê vegerand û got: Ew û xelkê dora wî tev de ji te re ne; tu bi dilê xwe yî, çi ji wan dixwazî bikî, bike.

Ra destên xwe hejandin û got: Nînûferk-Betah bi selameti nagehe Menfisê. Ne ew ne xelkê wî.

Di vê demê de kurê min Mêhît ji bin siwanê hol bû, xwe hingafte banê sefînê û ket avê.

Qîrîn bi xelkê sefînê ket. Birayê min ji mezela xwe derket û ji kurê xwe re neşîdeyek xwend. Lawik ji binê avê vegeriya banê sefînê. Birayê min neşîdeke din xwend. Zimanê lawik geriya û tiştê ko pê re bû ji me re got.

Digel kurê xwe ê mirî em vegeriyan Qeftê. Me ew herwekî sezayî kurên melîkan e tehnît kir, yanî derman xistin can û binava wî û di Qeftê de veşart.

Birayê min got: Divêt em lezê bidin xwe û rojekê berî rojekê bigehîn cem bavê me û-rewin; beriya ko bi tiştê ko li me qewimî bihese.

Em li sefînê siwar bûn û gihaştin cihê ko kurê me tê de bin av bû bû. Ez ji bin siwana melekî hol bûm, ketim avê. Nînûferk diayin ji min re xwendin û ez vegeriyam banê sefînê. Sefîne vegeriya Qeftê. Bi ayînine şahane birayê min ez li rex kurê xwe veşartim.

Birayê min vegeriya sefînê û ji nû ve bi rê ket. Gava nizingî li cihê ko ez û kurê xwe em tê de bin av bû bûn kir; ji xwe re got:

— Ma ne çêtir e ko ez vegerim Qeftê û bi Ahûrê re bême veşartin? Gava melîk ji min pirsî, kanîn zarowên min ezê çi ciwabê bidim-ê. Ma ez dikarim jê re bibêjim min ew bi kuştin dane û ez zindî vegeriyame cem te.

Birayê min piştî ko ev tişt ji nefsa xwe re gotin emir kire xulamên xwe û jê re

## MEMOZÎNA EHMEDÊ XANÎ

— 15 —

*Hişyariya Memî û Tacdîn e ji bêhûşî û mexmûriya şeraba eşqê, agahî û xeberdariya wan e ji sebeb û wasteyî wamqê*

Ew dûxteyî çeşm her du şahîn
Ew sûxteyî per Memo û Tacdîn
Xweş çûne şikari kebk û qazan
Nagah bi ser ve şibhi bazan
Nûrek fitilî li wan ji nageh
Êdî qe ne ma ewan çu ageh
Hindê ko di heftiya hemil bûn
Ew-zêde di wehşî û xebil bûn
Ew-hefte li wan ko bûye salif
Xo kerdeyî eşq bûn mualif
Rabûne-ve rojekê bi êk ve
Fekirîne bi reng û rûyê êk ve
Eşqê kiri bûn wisa mibed-del
Wan êk û du nas ne kir ji ew-wel
Ew-wel dikirin ji hev texer-rub
Paşê ko kirin bi hev teqer-rub
Dîtin xwe bi paçe bend û zingil
Perwaz û firîn mihal û mişkil
Eskûfeke zilmetê bi ser da
Celfûyeke ilfetê bi ber da
Bê te'me û bê şerab û bê çav
Bê meqsed û bê miraд û bê gav
Mestane ji rengi çeşmi dildar
Mexmûr û siyah û mest û bîmar
Manendi dihan yar dil-teng
Nalîn ji reha dilî wekî çeng
Gotin eceb em kû bûne bîmar
Ya bûne di key şerî birîndar
Ya ne wihe cem çira nikarîn
Mecrûh û zeîf û dilfikar în
Evrengehe wan dikir tefeh-hus
Mahiy-yeti hali xwe teces-sus
Tacdîn fekirî di destbirayî
Teyisit guherek wekî çirayê
Yaqûteke misli daneyî nar
Meş'el-sifet e ji bo şeva tar
Manendi şemal ew teyisî
Hek-kakî bi navê Zîn nivîsî
Destê xwe dirêj kirî ko bînit
Da qenc nezer bikit bibînit
Mem jî fekirî di dest Tacdîn
Elmaseke bêheha û texmîn
Lê navê Sitî kirî kitabet
Istadekî sahibî meharet
Ser-raf eger bibête b'qrat
Texmîn bikitin bi wezn û qîrat
Bazar bikit ji bo Felatûn
Mecmûi xezaînê di Qarûn
Semna semenê di wan nigînan
Nabit bi wiqûfi dûrebînan
Mayîn di teec-cib û tehey-yur
Daman û gelek kirin tefek-kur
Zanîn ko sewahibê nigînan
Herçî kirî kir Sitî û Zînan
Roja weko bû îd tehwîl
Ew jî geriyane came tebdîl
Çawa xemiline ev keçanî
Ew jî geriyane cil giranî
Ew bûn kome di rûzi newrûz
Misli meh û mihri alem-efrûz
Ew her du ne ey di dest vemiştin
Ew her du ne ey dexel dikuştin
Ew bûne di şehrî bûyî cel-lad
Ew bûne ko xelk ji dest bi feryad
Ew bûne ko van bi dil hebandin
Ew bûne li van ceger kewandin
Wan her du biran bi eql û texmîn
Bê şaibe qatilê xwe zanîn
Tacdîn li nik hebû şiûrek
Eşqê di wî hişti bû qisûrek
Go rabe bira ji nav nivînan
Bas ah bike ji ber birînan
Em şêr in û ew di xwe xezal in
Pir eyb e ko em ji dest binalin
Mem puxteyî eşq bû temamî
Got-ê go bira meger tu xam î
Da zen ne birî mices-sem im ez
Ser ta bi peyan miqes-sem im ez
Ev cisim li min bûye muxet-tet
Ew xet hemî bûne muneq-qet
Te'sir û rengê eşq û wemqan
Bit-tul di tûl û erz û imqan
Yek niqte nehin ji derd xalî
Hêja tu dibê çira dinalî
Dil bûye mehel-li eşq hala
Vî halî divê mehel-li vala
Nîne eceb er bibim hilûlî
Min maye ji sûretê heyûlî
Şahinşehê eşq bê xerez hat
Cewher veşirî dema erez hat
Ev hal û mehel û cism û cewher
Eşqê ji xwe ra kirin misex-xer
Can û ceger û dil û hinavan
Dest û ser û pê û pişt û çavan
Wel-lah yekî ne maye rahet
Bil-lah yekî ne maye taqet
Bizdandine wan ji min elaîq
Bilcimle dibên ko nehnû aşiq
Napirsî li halê min tu zalim
Hêja tu dibêjî ez menalim
Evrengehe wî ko kir tezel-lum
Tacdîn qe ne ma ji bo tekel-lum
Ew mane digel evan birînan
Behsa me li ser Sitî û Zînan.

---

perçak caw anin. Ninûferk kitêba sêhirê tê de pêça, ew kire berbejinek û li singa xwe pihêt girêda. Sefîne ji gihaşti bû dera ko em tê de bin av bû bûn. Ninûferk di bin seywanê re bi der ket û noqî avê bû.

Deryavanan da ber qîran û got: Ax felekê çi felaketeke mezin aniya serê me. Katibê ferzanê, zanayê bilindpaye çû, heywax.....

Sefîne gihaşte Menfisê. Firewin pê hesiya. Şîna Ninûferk girêdan. Firewin û kahinên wî hewranîne reş wergirtin; hatin ketin sefînê. Firewin ji xelkê sefînê dipirsî û digot; ma kes nîne ko cihê ko kurê min tê de xeriqiye şanî min bide... Kesî ne dizanî lê vegerine.

Bêrên sefînê radikirin. Yek di nav wan de giran bû bû, bi rahetî ranedibû. Du peyan rahiştin-ê û bi zor ji avê xelas kirin Ninûferk bi xurtiya sêhir û zanîna xwe bi bêrê ve bû bû û xwe gihandi bû Menfisê. Kitêba Totê reb li ser singa wi xuya dikir.

Firewin ko. çav bi kitêbê kir got: Vê kitêbê ji ser singa wî rakirin.

Xelkê dora wî gotin: Tacidara ji me zêde ye, lê tiştê ko hate serê me bela vê kitêbê ye. Ninûferk mirovekî mezin, xudan ray û tevdir bû...

Firewin jê geriya; qey tirsî. Ninûferk 16 rojan di tehnîtê de, 35 pênc rojan kitankirî û 70 roji kefenkirî hiştin û paşê veşartin.

Ev e tiştê ko ji ber kitêba Totê-reb li me qewimiye ».

CEMŞÎD

---

Kiriyariya Hawarê:
Ji bo Sûriyê 5 lîreyên sûrî - Ji bo welatên din lîrekî ingilîzî.
Xwedî û gerînendeyê bepirsiyar: Mir Celadet Alî Bedir-Xan, Şam—Sûriye
Directeur Propriétaire: Emir Djéladet Aali Bedir-Khan, Damas-Syrie
ŞAM — ÇAPXANA TEREQIYÊ — 1943

SAL 11 — ANNÉE 11
HEJMER 57 — NUMERO 57
YEKŞEMB — DIMANCHE
15 TEBAX 1943 — 15 AOÛT 1943

# HAWAR

KOVARA KURDÎ ✶ REVUE KURDE

DI VÊ HEJMARÊ DE



## TEFSÎRA QURANÊ

40 — Roja ko emê ji her mileteki li ser emelê kafiran şahidekî bînin, û Pêxemberê min, emê te jî bikin şahidê emelê wan, gelo wê demê halê kafiran wê çilo bibe?

41 — Di wê rojê de, yên ko kafir bûne û li ber Pêxemberên Xuda serhişkî kirine, wê bixwazin ko erd di bin lingê wan de biheze û ji hev bibe û ew bikevinê û tê de winda bibin; lê ew kengê dikarin gotin û emelên xwe ji Xuda veşêrin.

42 — Gelî bawermendîno ... Gava hon serxweş in, heta ko serxweşiya we ne bore û gotina xwe nizanin, nizikî nimêjê me bin; gava hon bi cinobe dibin, beriya ko destmêja xwe a mezin rakin ranebin nimêjê. Heke hon nesax in, an rêwingî ne û ji her du riyan tiştek derketiye, an hon nizikî jinan bûne û ko av bi dest we na keve bi axa pak teyemimê bikin, rû û destên xwe pê bifirikinin. Xuda îşê evdên xwe sivik dike û di gunehên wan dibore, xuda piyar e.

43 — Ma hon nabînin û birewer na bin ko zanayên cuhiyan seba xatirê çend peran metna Tewratê diguhêrînin û dixwazin we ji riya rastiyê derînin.

44 — Xuda dijminên xwe nas dike; bizanin ko arîkarî û sermiyaniya Xwedê besî we ye.

45 — Ji cuhiyan hin hene ko cihê kilaman diguhêrînin û dibêjin: Me bihistiye û me isyan kiriye; an ew ji dil inkar dikin û bes bi zimanê xwe mikur tên û emrên kitabê qebûl dikin û bi ser ve zêde dikin û dibêjin; tu me dibihîsî, lê em te na bihîsin, li me binêre, da ko em bêjine te û gotinên te fehim bikin. Ew bi wan gotinan dijûnker dibin û henekê xwe bi dinê Xuda dikin.

Heke wan bigota: Me emrê Xuda bihîst û me itaet kir, gotina me bibihîse û li me binêre, ev di heqê wan de çêtir dibû, lê seba kufrê, Xuda ji wan standiye, laneta Xuda li wan e, bi tenê çendek ji wan bawermend bûne.

46 — Gelî cuhîno ... Beriya ko emê rûyê we biçilmisînin û halê we xira bikin û laşê we bidewisînin û we mîna mirovên ko di roja şembê de masîvanî kirine, bêxine laneta Xwedê, baweriya xwe bi Qurana ko kitêba we Tewratê tesdiq dike binin û bizanin ko emrê Xuda tê cihê xwe.

47 — Xuda, di gunehên mirovên ko hevberê wî, tiştekî dikin nabore. Xwedê di gunehên xelkê ên din, ew guneh piçûk an mezin bin, li gora daxwaza xwe dibore û ji gunehkaran re efiw û toban dide, lê yê ko ji Xuda re tiştekî dike hevber û hempa, divê bizane ko wî destê xwe xistiye gunehekî giran û pê gunehkar bûye.

48 — Ma tu cuhî û filan na bînî, ew xwe bi xwe nefsa xwe ji gunehan paqij dikin ..... Lê ne were ye, Xuda bi tenê li gora daxwaza xwe, evdên xwe ji gunehan paqij dike.

Xuda di cezadanê de, ji tu kesî re bi qasî niqutekê jî zilmê nake.

# ŞEYTANQÛNÎ
## AN
## TABÛTA ŞEŞCENDEK

— 3 —

Di serê kanûna pêşin, sala 941 an da kemyonek ji Şamê bi derket û berê xwe da Der'ayê. Nava kemyonê ji malê ticaran dagirtî û li ser pişta wê tabûtek hebû. Ev tabûta han li ser siparîşa kefxoyê gundekî, li Şamê hati bû çêkirin û li ser pişta vê kemyonê ji kefxoy ra diçû. Dema kemyon bigehêşta, Horanê, dê tabût bidana siparîşkerê wê.

Gundiyên ko li ser riya Der'ayê, wek hemî gundiyên li ser şehrahan, ji bo gîbana cihê ko diçinê pir caran xwe didin ser rê û çavnêriya hatina tomobîlên barkêş dikin; da ko bi bihayekî hindik xwe bigehînin qesdegeha xwe.

Dinê sar û ezman tijî ewr bû bû. Hîn timobîl jî Şamê bîst kîlometran bi dûr ne keti bû ko rêwiyek di devê rê da destê xwe ji şofêr ra radike. Ji ber ko di nava kemyonê da cih tine bû şofêr, rêwî li ser pişta kemyonê siwar dike û bi rê dikeve. Pir naçe ko dergehê ezmên vedibe û baraneke xurt di ewran da tê xwar. Rêwiyê li ser pişta kemyonê, ji bo ko xwe ji ber baranê bide alî, deriyê tabûtê radike, tê da vedizele û derî li ser xwe digire.

Én ko bi riyan da peya çûne qenc dizanin ko piştî ws înê vezelîn xewê tîne. Nemaze di bin peşkên baranê û li ser pişta kemyonê, wek zarokên di landikê da mirov bêbemd ji xwe diçe. Rêwiyê delal jî bi vezelînê ra dikeve xew.

Piştî di xewvaçûna rêwiyê pêşîn bi hinekî, sê rêwiyên din siwar dibin û di pê wan ra jî dudu. Lê ev her pênc rêwiyên han, hezra miriyekî di nava tabûtê da dikin. Dizanin ko gundiyek di xestexanê da miriye û di nav tabûtê da li xelkê wî vedigerînin. Bi vê ramana han, di dorhêla tabûtê da pal didin û dipeyivin.

Dema rê dikeve erdê Horanê, ji neçakiya rê, di cih cihan da kortalin bê fesal çêbûne. Ji ber ko baranê ev kortalên han tijî av kirine, nema bi ser rê va ferq dibin. Ji lewre şofêr lê hişyar nabe û dolapeke timobîlê dikeve nav kortalekê û bê hemd diçenge. Bi çengînê ra timobîl pir xurt diheje û rêwiyê di tabûtê da hişyar dibe.

Rêwiyên li dorhêla tabûtê, herwekî tirsa çengîn û hejîna timopîlê têra wan nekiri be ko di nişkava devê tabûtê vedibe û kesê ko tê da mirî dizanîn, li ser xwe rûdine û ji tirsa hejîna tomobilê pel pel li dora xwe dinêre.

Her pênc rewiyên mayî dizanin ko miriyê di tabûtê da şeytanqûnî bûye. Timobîl li ser 40-50 kîlometirî dibeziye ko her pênc bi hev ra ji tirsan xwe zer dikin û tavêjin xarê. Herwekî ê şeşan (ê ko di tabûtê da bû) naxwaze ji wan vebe, ew jî xwe ji pê wan davêje xarê. Tevî şikestina dest û lingên her pênc rêwiyan. dema dibînin miriyê şeytanqûnî jî xwe li pê wan avêt: dixwazin li erdê jî birevin. Lê heyhat ko nema rev bi kesî dibe; ji ber ko tu kes bi selametî ne giha bû erdê.

Gava şofêr dibîne ko her şeş rêwiyên li ser pişta kemyonê bi hev ra xwe avetin, zûka disekine û vedigere ser wan. Lê ne wekî herê wan li ser lingan vê carê hinekan deverû û hinekan jî li ser piştê dibîne. Dema sebebê xwe avetinê ji wan dipirse, her pênc dihêjin:

— Me miriyek di tabûtê da dizanî. Gava timobîl çengiya û derê tabûtê vekir, me got qey şeytanqûnî bûye û me xwe avêt.

Hînga şofêr diçe ser ê şeşan (ê ko di tabûtê da bû) û dibêjê:

— Ev camêrên han ji te tirsîn û xwe avetin; lê te ji bo çi xwe avêt?!..

— Çaxa timobêl çengiya û ez hişyar bûm, min nizanî bû ko çi qewimiye. Lê gava min dît ên dora min xwe bi lez û bez davêjin, ji min ra welê hat ko agir bi timobîlê ketiye; hema bê atlahê min jî xwe li pê wan avêt.

Şofêr her şeşan dîsa li dorhêla tabûtê girêdide û tevî tabûtê dibe her xestexana Der'ayê. Bi vî awayî tabûta ko ji bo rakirina cendekekî hati bû çêkirin; di rojekê da şeş cendek li dora xwe civandin.

**OSMAN SEBRÎ**

# DÎWANA MELÊ

Dil yek e dê eşq yek bit aşiqan yekyarê bes
Qible dî yek bit qulûban dilberek dildarê bes
Min di benda zilfekê dil da bi destê pîrê eşq
Lew di eşqê da ko best ihram û yek zen-narê bes
Terh û terzê pût e zen-nar û çelîpa yek bi yek
Lew me zen-nar û çelipa yek tenê yek carê bes
Hin ji nik dêrê ve tên, qesta kenîştê hin dikin
Ne ji wan im ne ji wan, min derê xem-marê bes
Gerçî tên reqs û semayê her sed nêyşeker
Min di bezma sirşîrinan ev şirîn reflarê bes
Weh çi wala gewher in hatin libasê cism û can
Min ji wan horî surîştan ew perî rixsarê bes
Hewce sihrê Samirî nîn im ko zilfan reş bikin
Çeşmê benda dilribayan kokila eyarê bes
Bilbilan sed kil di çavin, çav li sed gul vedikin
Min di baxê gulizaran yek gul û gulnarê bes
Min di baxê gulfiroşan dî ecêb resmek xerîb
Xarê teb'an gul di dest in gulperestan xar e bes
Ew cefa çû der ji hed zilma te bir heta bi Çin
Rehmekê carek bike hey! zalimê azar bes
Xerqê deryaê gunah in teşne ê lutfa heq in
Rehmetê amûzikar û şefqeyê xef-farê bes
Ehlê dinyayê seraser dijminê min bin mela
Piştemêrê min Elî ê Heyderê ker-rar e bes.

# GULISTAN

## GULISTANA SADIYÊ ŞÎRAZÎ

Sadî ji şairên Îrana kevin e. Di dawiya sedsala şeşan a hicrî û di heyama Se'd kurê Zengî (ji etabikên faris) de li Şîrazê ji diya xwe bûye. Bavê wî nisbet bal navê etabekê wî wextî ve navê Sadî lê kiriye.

Dibêjin ko Sadî 102 salan emir kiriye. Ji van 102 salan 12 bi zarotiyê, 30 bi xwendin û hînbûne, 30 bi ger û eskeriyê û sibên din jî bi taet û ibadetê derbas kirine.

Di nav eserên wî de Gulistan û Bostana wî ji hemiyan bi nav û dengtir in. Ev her du eser li gelek zimanên ewropayî hatine wergerandin.

Sadî ji ber xwendinê gelek di dinyayê de gerîyaye; çûye Misir û Hindê ji. Dema di welatê Şamê de digeriya, li nizingî Trablisşamê ketiye destên ehlên-selîb û bû hêsîr. Di hêsîriya xwe de di xendekên keleha Trablisê de wek emelekî xebitiye.

Gulistana Sadî tev de hikemiyat in. Sadî hikmet û felsefa xwe bi hênceta çîrokan gotiye û paşê ew di hin malîkan de xulase kirine. Me dil kir ko ji xwendevanên xwe re hin çîrokên Gulistanê ber pê bikin.

Sadî Gulistana xwe bi dîbaçe û heşt fesilan lev vekiriye. Heye ko hin xwendevanên me dil bikin kurdmancî û farisiyê deynin ber hev. Ji lewre li rex her çîrokê me fesila wê işaret kir.

Di wergerandinê de me ji lefzê bêtir guh daye manayê. Ji lewre heye ko di lefzê de, carina esil û tercime li hev dernekevin.

— 1 — *FESIL: 1*

ÇÎROK. Dibêjin rojekê Nûşêrewanê adil çû bû nêçîrê. Li wextê taşê jê re nêçîrek dibiraştin. Xwê nîn bû. Rabûn lawikek rêkirin gundekî; da ko ji wan re xwê bîne. Nûşêrewan gote lawik:

— Heqê xwê bide û bibe. Da ko cem xelkê nebe adet tiştan bê pêre ji gundan bibin. An ne gund xerab dibin.

Berdevkan got: Ma ji tirihek xwê çi ziyan çêdibe?

Nûşêrewan: Asasê zilmê li dinyayê bindik bû; heçî hat tiştek lê zêde kir. Bi vî awayî zilim gihaşte halê xwe ê îro.

Heke mîr ji bexçê xelkê xwe sêvek xwar
Peyayên wî dara sêvê ji kokê ve radikin.
Heke siltan bi standina pênc hêkan sitemkarî kir
Leşkerê wî hezar mirişkî dikin şîşan.

Ji sitemkarê bed re dinya namîne
Lê lanşta xelkê lê dibe payedar.

— 2 — *FESIL: 1*

ÇÎROK. Yek hebû di sinheta pehlewaniyê de bi ser keti bû. Di vê sinhetê de sê sed û şêst fen û bend dizanîn û hero bi fenekê diçû navê.

Di nav şagirtên wî de xortekî çeleng hebû. Hos'e meyildariya wî dikir. Rabû ji sê sed û şêst hinerên xwe sê sed pêncî û neh hiner hînî wî kirin. Hinereke bi tenê şanî wî ne da.

Lawik di pereçongiyê de hewqas xurt bû ko tukesî pê ne dikarî. Şagirt bi vê xurtiyê ewçend ji xwe razî bû ko rojekê gote melîk: Bi zexmiyê ez ji hosteyê xwe ne kêmtir im. Di hinerweriyê de em beramberê hev in. Bi tenê ew bi emir ji min mezintir e, û ez elimandime.

Melîk ji vê kêmedebiyê kêfxweş ne bû; madê xwe kir û emir da ko hoste û şagirt biçin nava hev.

Di meydaneke fireh de hoste û şagirt bera hev bidana. Rikinên dewletê û giregirên welêt di meydanê de li hev gihane hev. Lawik wek fîlekî mest bi der ket. Bi derbeke welê hemle kir ko di pêşiya wî de çiyakî hesinîn biwa ewê ji cih bileqiya.

Hoste zanî ko lawik bi zexmiya bazûyên xwe serdestî wî ye; rabû bi fena ko şanî şagirtê xwe ne kiri bû, dirêjî wî kir. Lawik nizanî bû li wê fenê bigerîne. Hoste şagirtê xwe bi du destan girt, rakir ser serê xwe û avêt erdê.

Qîrên bi xelkê ket. Melîk emir kir ko hoste xelat û lawik ceza bikin. Ji ber ko li ber hosteyê xwe rabû û pê nikarî.

Lawik got: Xudawendal hoste bi zexmiya xwe zora min ne bir. Lê di sinheta pereçongiyê de fenek hebû ko ew ji min veşarti bû. Îro bi wê fenê dirêjî min kir û ez xistim erdê.

Hoste got: Ji xwe min ew fen ji bona îro hilanî bû. Hekîman gotiye; ji dostê xwe re ewçend qewetê mede, da ko heke rojekê bûye neyarê te, nikare te.

Te ne bihîstiye, yê ko ji şagirtê xwe cefa dîtiye çi got ye:

An wefekarî di vê dinyayê de nîn bû
An di vî zemanî de tukesî pê emel ne kir.

Kes ji min hinî tîravejiyê ne bû
Ko dawiyê ez ne kirim armanca xwe.

— 3 — *FESIL: 1*

ÇÎROK. Padişahek bi xulamekî [1] ecemî re di keştîkê de rûniştî bû. Xulam tucaran derya ne dîti bû û zehmeta keştiyê ne kişandi bû. Dest bi girî û zariyê kir; lerzê bi canê wî ket. Gelek pê re xweş kirin tu havil jê çênebû. Padişah ji vî halî gelek aciz dibû; lê tu çare jê re ne dihate dîtin.

Di keştiyê de yekî çeknas hebû. Rabû gote

## MEMOZÎNA EHMEDÊ XANÎ

— 16 —

*Mlawedela Sitî û Zînê ji sersal û yeşlê, islitlaa dayê li macera û serguzeşlê*

Ew jê vegerin bi vî libasî
Hazir şeliyan ko kes ne nasi'
Herçend kirin libas tebdil
Em-ma ne dibûn ji halî tehwil
Eşqê kiri bûn wisan mibed-del
Êdî ne diçûne halê ew-wel
Qet kes ne digo Sitî û Zîn e
Xelkê we dizanin ecnebî ne
Daylneke wan hebû zemanî
Teşbihi belayi asimanî
Zala felekê li ber zebûn bû
Wê nav ji pîrê Heyzebûn bû
Ew hat ji xefletê bi ser da
Fekirî ko cilê di wan di ber da
Rûniştine bê mezaq û meşreb
Winda kirine zeqen di xehxeb
Yanî di tehey-yir û melal in
Mehpare di haletê webal in
Culwa bûyî cûcemî di taze
Rengê semenî be cayi xaze
Kafûr misil izar qanî
Sorgul geriyane ze'feranî
Zanî ko peri di bê libas in
Mehbûb meheb-betê unas in
Go ey hewesa dil û hinavan
Heryek ji we ruhniya du çavan
Hafiz ji we re meger Xwedê bit
Canê me ji bo we ra fedê bit
Hon binde miqey-yed in di qeydê
Îro bi tenê ko çûne seydê
We zû şemirand ji bo çi sersal
Hon rast bibên ko bûye ehwal
Bêjin ko miqedime çi reng e
Ev heyret e ya xeyali beng e
Hon bo çi hezin in ey metaya
Nînin çû netice bê qezaya
Hon bêjine min kû bû qeziy-ye
Kengê li me xef dibit xebiy-ye
Ez dê nihe renlekê birêjim
Ismî û zemirî ez bibêjim
Yan şûşe û mendela xwe danim
Mahiy-yeti halî dê bizanim
Wan gotine dayeyê nihanî
Em sibhe ko çûne der ji xanî
Herçî li me bû duçar û peyda
Hazir kiriya cinûn û şeyda
Axir ko bed-dî çûye der cûr
Cewrê li me aqibet nima dûr
Em ji geriyan melûl û mexbûn
Halîne ve em xefif û mecnûn
Dayîn bi teen-nî û tewel-la
Çû pal ve daye wan tesel-la
Ko hon bi cemal şehriyar in
Heryek ji we şah û xundikar in
Kî bit ko nebit miti' û mihtac
Kî bit ko nedit we bê teleb bac
Herçî we hebandî ey perîzad
Hisna we dikit ji bo we minqad
Xesma di vî şehrî bit we dildar
Ez dê wî bikim niho xeridar
Bêjin kî ye da biçim bibinim
Hazır bigirim ji bo we bînim
Wan gotine Heyzebûni sabir
Derdê li me ey tebîbi mahir
Bê şibhe dewa ji dest te têtin
Teqrîr eger ji dest me bêtin
Teqrîr û eda kirin mihal e
Tedbîr û dewa kirin betal e
Hindê hene kîj û kur di Buhtan
Belkî di cemiî bejn û bihtan
Kes nîne bi lilf û bisin meşhûr
Il-la ko di deftera me mestûr
Yanî hemî rû bi rû me dine
Hindê di vî şehrî ademî ne
Êr-he du keç xeriqi şîha
Ser ta bi qidem di bêq û dîba
Zibende ji şikli şahi-xawer
Tabende ji rengi mahi enwer
Nageh li me bûn duçar û zahir
Gêr bûn ji dûr ve her du nadir
Em çûne bi ser binên ko kî ne
Fekirîn ne wek me ademî ne
Tehqîq melek we ya peri bûn
Lewra ko li av û gul beri bûn
Gava ko me ditin ew perizad
Em ji geriyan ji eqil azad
Ew her du wekî du cami Cemşîd
Em her du misali mah û xurşîd
Gava we ko pék ve hûn miqabil
Misbah û zicac bûn miadil
Qarûre ji ba necim mine'kis bû
Nûrek me bi qelbi miqtebes bû
Qendîl û fitile ger ji wan bû
Agir ji ruxê me her diwan bû
Zeytê me û agirê me dîsa
Ber bû me we dil pê eyîsa
Subtin xwe bi xwe nizan çi hal e
Hişyarî ye, xewin e, ya xeyal e.

---

padişah, heke melîk ferman kir ez dikarim wî ker bikim.

Padişah got, gelek qenc dibe. Wî zilamî got: wî bavêjin Lehirê da ko çend caran noqî avê bibe.

Bi pora xulam girtin û ew anîn qûna keştiyê û kirin ko wî bavêjin deryayê. Xulam bi du destan bi qûna keştiyê girt û lê hilawistî ma. Gava vegeriya ser keştiyê çû di quncikekê de rûnişt û nema deng kir.

Padişah ji tevdîra mêrikê çeknas re gelek kêfa xwa anî û got-ê: Hikmeta tevdîra te çi ye?

Ewî zilamî got: Vî xulamî ezabê binavbûnê tam ne kiri bû, ji lewre qedirê selametiya keştiyê ne dizanî. Qedirê afiyetê ew peya dizane ko bi nesaxiyê ketiye.

Ey mirovê têr, hanê cehin bi te ne xweş e.
Tiştê ko nik min spehî ye, ew tişt bi xwe ji bo te
[ kirêt e.

Ji hûriyên bihuştê re araf dojeh e [1]
Ji dojehnişînan bipirs; ji bo wan araf bihuşt e.

FARISÎXANÎN

[1] Xulam li hire bi maua lawik e.
[2] Araf, di navbera dojeh û bihuştê de bend an diwarek e

## YA REB

Di tarîka şeva hicran ciraek suhtim ez ya reb
Ji ser he!a piyan îro bi carek vêketim ya reb
Nema min sebr û aramek ji ber jana evîna dil
Evîn behr e welê tenha bi ber pêlan ketim ya reb
Ji dîlber dûr ketim lewra be!a ser daye can û dîl
Temaşa nakitin dilber ko ez bê taqet im ya reb
Meger pirsê li min naket welê ew tê xeyala min
Şev û rojan bi nalîn im bi ah û hesret im ya reb
Şev û rojan hi kovan im bi bilbil ra bi efxan im
Enîsê xunçê baxan in ji gul ez dûr ketim ya reb
Digel bilbil dinalim ez evîn im wek hilalim ez
Şikestî rengê dal im ez di halê hirqetim ya reb
Di gora eşqê borî me yeqîn ez pîrê Torî me
Wekî Elî Herîrî me di qeyda hicret im ya reb
Meger ez Ristemê kurd im firaqê ez nexweş
[ kerdim
Cegerxwîn im siyacerd im di kunca xelwet im
[ ya reb

CEGERXWÎN

## SEFERA SICÎLYAYÊ

### QEWETÊN SONDXWARIYAN ÇAWAN DAKETINE GIRAVÊ

Piştî ko sefera Efrîqayê gihaşte dawiyê û sondixwariyan erdên Misir, Bingazî, Trablisxerb û Tunisê ji eskerên mihwerê paqij kirin herkes di gubdariyê de bû. Gelo sondixwariyan di kû re dirêjî keleha Ewropayê bikin...

Balafirên ingilîzî û emêrîkanî ji wargehên Efrîqa bakur radibûn, Îtalye nemaze girava Sicîlyayê didan ber bombeyên xwe. Vê bombaranê bi heftan ve ajot.

Li 8 û 9ê Tîrmebê balafiran girava Sicîlyayê, bêetlahî 48 saetan bombaran kir. Ajansan ev nûçe belav kir. Herkesî dipirsî gelo sondxwarî dikin dakevin giravê.

Li 9ê Tîrmehê piştî nîvro li saet dehan nobetdarên peravê di nîvro-rohelatê giravê de noqaveke ingilîzî dîti bûn. Noqav nîzingî li bendera Başînoyê dikir. Dinya hêveron, derya sakin bû. Betariyên peravîn topên xwe li noqavê girêdan. Noqav bin av bû. Lê piştî çend deqîqan noqavê ji nû ve da rû.

Dîsa di wî wextî de sê balafirên talyanî di ser xelîca Cilayê re difiriyan. Nobetdaran di nîzingî xelîcê de jî du noqav dîti bûn.

Wan her sê noqavan di navbera Efola, Başîno û di xelîca Cilayê de kûrahiya behirê qam dikirin. Li saet yanzdehan xeber gihaşte serfermandariya ordiwên sondxwariyan ko di wan peravan de ber bi qeraxê kûrahiya behirê, di hin ciban de, ji nîv gazê kêmtir e.

Talyanan li xwe hişyar bû bûn. Ronavêjên giravê sînga ezmên û dûrahiya behirê hê etlahî didan ber ronahiya xwe.

Li saet yanzdehan 560 balafirên bombavêj di ser wan peravan re firiyan; balafirgeh û betariyên peravîn dane ber bomban.

Şev çû bû nîvê şevê. Gulokine sipî ji balafiran dibûn û diketin erdê. Ew sîwanvanî bûn. Di pey wan re balafirên eskerguhêz nîzingî li erdê giravê dikirin.

Ta sîwanvaniyên pêşîn da bû ber xwe û ew ji cihê ko dixwestin lê peya bibin, bi dûr xistin. Lê heyveronê arîkariya wan kir û bi peyarî vegeriyane armanca xwe. Lê sîwanvanî hindik bûn û talyanan ew dîti bûn. Li hev xistin. Sîwanvanî bêgav man, cihê xwe ji dest dan û bi şûn de kişiyan. Talyanan dikir ko li wan wer bihatana. Di vê navê de çend balafirên eskerguhêz gihaştine ser û eskerên ko ji wan peya bûn, çûne hawara sîwanvaniyan. Ji talyanan jî selefek siwar gihaşti bû cihê pevçûnê. Lê ingilîzan zora talyanan bir, ew bi şûn de avêtin û cihê ko berî midekî ji dest da bûn bi şûn de vegerandin û lê asê bûn.

Tevgera balafir û sîwanvaniyan heta siseyê sibehê sekinî. Dor gihaşti bû stolê. Stol di bin himayeta balafiran de nîzingî li peravê kiri bû. Krewzorên giran û sivik bi torpiyor û bertorpiyoran dorgirtî xwe gihandi bûn mesafa endaxtê û topên xwe li betariyên peravîn girêda bûn.

Saet bû bû pêncê sibehê. Stolê betariyên talyanî, yên ko di nav darên zeytûnan de veşartî bûn, ji Katanê heta Başînoyê ker û lal kiri bûn.

Li saet pêncan eskerên bejê pê li erdê giravê kiri bûn. Li mintiqa Cîla-Lîkatayê emêrikanî û li peravên Basîroyê du firqeyên kenedî peya bû bûn. Pêşdarên ordiwa heştan ji daketi bûn mintiqa Seragozayê.

Saet bû bû heştê sibehê, 9 Tîrmeh roja Şembiyê. Yanî ji wextê ko siwanvaniyên pêşîn daketi bûn giravê heşt saet borî bûn. Sîwanvanî

# HÊVIYA NUH

Razame li ber dergehê meyxaneyê naçim
Şermestî û bê heş.
Mîna keşeyê sondxwarî paresteyê xaç im
Wergirtî cilê reş
Min xaç û pûtên xwe wekî Îbrahîm şikandin
Ez bûm bi serê xwe
Min şêx û mela sofî û derwêş qewitandin
Ji pêşî derê xwe
Me hêvî mezin bû ji mezin rîspî û kalan
Heyhat û hezar ax
Sist bûne rehên şêr û piling, gur û şepalan
Tev bûne malkambax
Kes nîne ji dil bo gelê Kurd bike xebatê
Wek Ristem û Ihsan
Bi destê zorê veke riya jîn û felatê
Dilgeş bike kurdan
Gava ko me dît dem holê bêkêr hat ji bo me
Zendê xwe vemalan
Xebata welêt karekî dijwar û bi dom e
Gazî ji hevalan
Me hêvî ji kesî nema bê xortên welatî
Ew hîmê welêt in
Ên tîra neyar Cerg û hinav jê sot pahtî
Tev agir û pê tin
Yektî me divê me rê ew e, em dê biçin her
Yezdan arîkar bit
Serdestî ji bo me ne pir e em dê bibin, ger
Cîhan bi neyar bit.

OSMAN SEBRÎ

di bakurê Cîla û Baŝîroyê de sê balafirgeh xisti bûn destên xwe. Qewetên emêrîkanî di peravê de serpirek saz kiri bûn û tê re çekine giran daxisti bûn bejê û tangên emêrîkanî bajarê Cîlayê zemt kiri bûn.

Li wextê nîvrô hawara eskerên mihwerê hati bû û mihweriyan di bakûrê Cîlayê de dirêjî emêrîkaniyan dikir.

Di mintiqa ordiwa heştan de brîtaniyan li bakurê Efolayê û di nîvroyê Ŝeragozayê de du serpir saz kiri bûn û di wan re ordiwa heştan dadiket bejê. Eleman û talyanan xwe dan paş û di bajarên li jor binavkirî de asê bûn. Eskerên ingilîz ketin Efolayê û mihweriyan berê xwe da Talirîdayê.

Heta 12ê Tîrmehê roja Duşembê sondxwariyan di peravan de enîke bi 150 kîlomêtirî fireh danî bûn û qederê 15 bajar xisti bûn destên xwe. Lê kûrahiya eniyê ji çend kîlomêtiran ne bêtir bû.

Roja Duşembê, serê sibehê di hewêrka (mintiqe) firqa talyanî a 48an de şerine no çêbûn. Eskerine elemanî bi qederê sed tangên giran gihaşti bûn wê hewêrkê, hewêrka emêrîkaniyan. Mihweriyan bi xurtiya tangên xwe, emêrîkanî vegerandin heta qeraxê. Cenkeştiyên ingilîzî û yewnanî yên ko li ber bajêr bûn bera tangan dan û ew bi şûn de vegerandin û hin jî şkênandin.

Di vê navê de sîwanvanîne kenedî daketin paşiya ordiwa mihwerê û kirin ko rê li wan bibirin. Bi wî awayî û heta nîvro emêrîkanî xwe ji nû ve saz kirin û berê xwe dan Lîkatayê û dest bi êrîşê kirin.

Kenedî û ingilîzî di roavayê Efolayê de gihane hev. Ji milê din baskê kenediyan ê çepê pişt dida ordiwa emêrîkanî.

Ber bi êvarê, di hewêrka Ogûstayê de elemanan avêtc ser ordiwa ingilîzî a heştan; bi mexseda ko riya deşta Katanê li wan bigire. Ingilîz bêgav man û di hin deran de xwe dan paş; elemanan deverine ko keti bûn destên ingilîzan bi şûn de vegerandin. Şerî bi şev jî di ronahiya tava hêvê de dom kir. Betariyên stolê bera elemanên ko nîzingî peravê dibûn dida: sîwanvanî jî dadiketin paşiya elemanan.

Bi vî awayî ingilîzan xwe ediland, Ogûste ji nû ve stand. Elemanan xwe da paş û bêî ko bêne mihasere kirin kişiyan û di devê deşta Katanê de şargeh bûn.

Herçî talyan in, di nav van her sê rojan de, ji 20 000î bêtir hêsîr dan û ew jî bi şûn de kişiyan.

# EZ Û YAR

Pêjna me kir û hove ne da rengê xezalan
Dûr ket û nêrî her du birî rengê hilalan
Min got: tu çima dûr direvî, qey me nenasî?!..
Go: şerm û fehêt e me ji van dost û hevalan
Min got: tu were da bi edeb biçme tewafê
Yek bose ji qews û birowan bo me helal e.
Go: ma te diye fitwa te vî qewlê qedîm e.
Min gotê: bi min qewlê qedîm xewn û xeyal e
Ez miftiyê eşq im bi xwe fitwa min evîn e.
Go: miftiyê eşqê tû î fitwa te betal e.
Min got: tu î Laleş, bi xwe hatim te bibûsim.
Go: xirqe û bendik te ne bin ew jî mibal e.
Min gotê: Cegerxûn e ji derdê te dinalî.
Go: rast e Cegerxûn e di benda me delal e.
Destê xwe bi min da û me her ser bi piyan bir
Go: na, tu Cegerxûnê min î hilkişe bal e.

CEGERXWÎN

---

Êdî lingên eskerên sondxwariyan di giravê de erd girti bû; hemla sondxwariyan çû bû serî û sondxwarî hêdî hêdî girav vedigirtin; heta ko gihanc bakur rohelalê giravê. Li hire di pêşiya Katanê de hinek sekinîn. Elemanan Katan asê kiri bû û dixwestin şerê xwe lê de, xweş bikin.

Di vê navê de herwekî xwendevanên me dîzanin Mûsolînî îstifa kir û dengekî aşî an teslîmbûnê belav bû.

Sondxwarî piştî ko midekî li hêviya vî dengî man û bihina xwe dan li 2ê Tebaxê ji nû ve dest bi êrîşê kirin.

Qewetên mihwerê di dora çiyayê Êtnayê de asê bû bûn. Ev çiya, ji xwe re kiri bûn talde. Di êrîşa sondxwariyan a nû de ingilîzan ji nîvro dirêjî Katanê; emêrîkaniyan jî ji bakur roava dirêjî Misînê dikin. Bi vî awayî Êtna, talda qewetên mihwerê di navbera her du qewetan de dimîne. Herçend qewetên sondxwariyan di baskên taldê re pêş ve diçin; ewçend cih li eskerên mihwerê yên ko di taldê de ne, wê teng bibe.

Katan li ser ketinê ye, emêrîkanî zorê didin riya Misînê; şer dom dike.

Şam: 4 Tebax 1943 NÊREVAN

Piştî ko me ev bend nivîsand radyowan elam da ko Katan ketiye.

Roja ko Katan ketiye di eniya rohelê de jî ûrisan zefereke mezin xistc destên xwe. Ûrisan bajarê Orêlê zemit kir û berê xwe da Briyanskê. Ji milê din ûris zorê didin eniya Xerkovê jî.

Welê dixuye ko şerê Ewropa a mezin ne dûr e. Sondxwari ji roavê, ûris ji rohelê bi derbeke xurt elemanan li erdê dirêj bikin.

# ÇETEYÊN RÛSÎ

Dema ko Ordiwa rûsî di eniyan de şerê neyarê xwe dike, xelkê çekhilgir jî çetan dilînin pê û dirêjî eskerên elemanî dikin.

Adet e, carina fermandarên mezin rojnamevan diezimînin qerargaha xwe. Merêşalê elemanî Von Klûg jî hin rojnamevan ezimandi bûn nik xwe. Di nav wan de bi navê Ernest Ştrarenber, yekî îsveçî hebû. Rojnamêvanê îsveçî der heqê vê ziyaretê di rojnama xwe de gotiye:

Li yekê Tîrmehê, êvarê ji me rojnamevanan re goti bûn ko merêşal von Klûg û general von Hot sibe her sê firqeyên zirehpûş yên ko nû hati bûn eniyê wê teftîş bikin. Sê rojnamevan jî di wê teftîşê de wê hazir biwan. Ez di nav wan siseyan de bûm.

Bi roavê ve em li timobîlê siwar bûn û me terka Orêlê da û di nîvroyê wê de, em gihaştine gundekî. Em di otêleke piçûk de bi cih kirin. Xwediyê otêlê yekî nemsewî bû.

Di otêlê de ji me pêve çend zabitên elemanî hebûn. Ew jî ji bo temaşa firqeyên zirehpûş ên nû hati bûn.

Kulnêl Heynrîx ji me re goti bû ko selefine siwarên mecerî û romanî di bin gundê ko em lê bûn re nobet digirtin. Ji ber ko çeteyên rûsî car-caran ji wê bindavê dirêjî wan dikir.

Di nav me de rojnamevanekî talyanî hebû; bi navê Emîlyo Batriyonî, mixabirê « Popolo di Roma ». Emîlyo gava gotinên kulnêl bihîstin dil kir ko vegere Orêlê. Hinek tirs giha bû-yê. Kulnêl gote mixabirê talyan: Nijdevanên rûsî nîzingiyê li gund bikin jî nikarin bikevin gund. Ji ber ko ji siwarên mecerî û romanî pê ve di dora gund de top hene.

Me bi derengî şîv xwar û çûn oda xwe. Em her sê rojnamevan di odekê de dê raketana. Di odê de tu text û dikek hebû. Ez û talyan heryek ji me xwe gihande textekî. Hevalê me ê siseyan xwe li dikê dirêj kir. Piştî çend deqîqan hevalê min ê talyani deng li min kir û got ko ditirse. Min bi çend pirsan dilqewînî da-yê; lê bêfêde.

Wexit çû bû nîvê şavê. Saetê jî nîzingî li yekê dikir. Ji nişkekê ve me dengê tifing û mîtralyosan kir. Nijdevanên rûsî bi ser gund de girti bûn. Hevalê me ê talyanî yê ko xew bi çavên wî ne keti bû, ji odê baz da, berê xwe da jêr da ko ji xwe re zêrzemîneke peyda bike. Me jî da pey.

Zabitên elemanî jî di salona otêlê de giha bûn hev. Kulnêl bi ken gote min: Tu dibînî heq di destê hevalê te ê talyan de bû. Lê siwarên me çeteçî sekinandine û bera wan didin.

Kulnêl dikir ji otêlê derkeve û here xeta agir. Min jê hêvî kir ko min jî bi xwe re bibe. Kulnêl dîsa bi ken gote min: Welê dixuye ko tu natirsî; lê nijdevanên rûsî segmanine qenc in.

Dinya tarî bû. Ji lewre brûska tifingan xweş xuya dikir. Di gund de xelk hindik bûn. Gelekê wan beriya hatina elemanan revî bûn. Yên ko di gund de ma bûn li ser dengê tifingan derketi bûn gastînê. Eskerên mecerî ew vedigerandin xaniyên wan. Kulnêl li onbaşîkî galî, ji ber ko li jinikeke avis da bû.

Ji me re du hesp anîn; li yekî ez, li ê din kulnêl siwar bû û em bi rê ketin. Me berê xwe da bû nîvro..

Piştî çaryek saetê em gihaşti bûn ber qerargaha firqa siwarî. Her tişt qediya bû. Qemyonek li ber me sekinî. Zabitekî mecerî elam da kulnêl ko di pevçûnê de çar peya û jinikek hêsîr kiri bûn. Kulnêl dil kir ko hêsîran isticwab bike lê her pê ican jî xwe ker kir.

Gava em gihaştin qerargahê me zanî ko nijdevanan dirêjî depoxaneke cebirxanê kiri bû û berî ko siwar bigehin-ê agir pê xisti bûn. Ji mecer û romaniyan hevdeh û ji ûrisan heft kuştî hebûn. Ji kuştiyên ûris dido pîrek bûn ».

SMAÎNÊ SERHEDÎ

# FERYAD

Kanî Cehfer, kanî Ewnî, ka Reûfê pir hiner
Dûr ketin axa welatî gorî we ev leş û ser
Ey Hesen pê re Birahîm hûn bî xemxwarên welêt
Bîn dikim axa riya we dil de her ev êş û pêt.

Her ji qehran ez dinalim min niye sebr û tebat
Çendî rabim, çendî rûnim her dibêjim ax welat
Em dizanî feyde nadit bo me gotin bê kirin
Me hene hindek welatî ew ne mêr û çavşir in.

Min nivîsî bo we dîrok her ji sala çil û sê
Rêz bi rêz şagirt bixwînin kengê bêne medresê
Navê we hildin bibêjin serwer e bêraq û al
De bila gorî welat bit herçî can û herçî mal.

Bes dixwazin serferaz bit ev welat her gav û çax
Bigerin em tola welatî ger li deşt û ger li şax
Dijminên vî qewmê kurdî ev nezanî her sebeb
Tev perîşan û belengaz çûne Bexda û Heleb.

Lawê kurdan her ji bakur bê gunah ew diçine Faw
Bûye pêgeh bome kurdan ax ji derdê qewmê Faw
Em dizanîn halê Eyran, Anedol û Faw ev e
Her li ser vî qewmê kurdî lewre em her diçne Faw e.

Derbê paşî ê me ye wek Ristemê kurd pehlewan
Sed sipas bo lawê kurdan paşê rastî diçne Faw
Botiyê bêkes tinê her digerit çol û beyar
Da bibînit rojekê lawên delal bûn dost û yar.

Mûsil 30/2/943. M. E. BOTÎ

# PANAMA

## JAPONAN EV KENAL DÊ BERHEWA BIKIRA

Emêrîka bi du birên mezin lêk ve dibe: Emêrîka bakur, Emêrîka nîvro. Ev her du bir heta sala 1914an bi bejtengekê bi hev ve girêdayî bûn. Emêrîke di navbera du behirên mezin de ye: Etlantîk û Pesîfîk. Vapora ko ji bendereke Emêrîka bakur ya rohelê radibû û dikir ko here bendereke Emêrîka bakur ya roavê jê re diviya bû dakeve heta xelaseka Emêrîka nîvro, bej li xwe ba bide û ji nû ve berê xwe bide bakur. Ev sefer ne îşê rojan, lê îşê meh û heftan bû.

Di sala 1914an de şirketeke emêrîkanî bejtenga Panamê qul kir û kenalek, wek kenala Swêşê, anî pê. Ji hingê ve vapor ji bona ko ji rohelê derbasî roavê bibin, û ji ber vajî ve, nema Emerîka nîvro li xwe ba didin; di kenalê re derbas dibin.

Erdên dora kenalê milkê dewletên yekbûyî (dewleta cimhûriyetên emêrîka bakûr ên yekbûyî) ne. Emêrîkê di wextê aşiyê de jî di kenalê de esker bi xwedî dikir. Lê piştî ko bû şer hikûmetê ew esker zêde kirine. Tirs hebû ko japon xirabîna di kenalê de bikin û wê biretimînin.

Herwekî ji çirokiya jêrîn dixuye dilê japonan hebû; lê ji wan ne hatiye. Rojnameyên emêrîkanî dibêjin:

Di destpêka sala 1940î de memûrekî japonî, bi navê Otî Maygoşî; hati bû Emêrîkê û di kunselosxana japonî ya Şîkagoyê de bi cih bû bû. Digotin katibê konsilosxanê ye. Piştî çar mehan Maygoşî bi emirê hikûmeta xwe çû Panamayê û bû wekîlê konsilos.

Maygoşî piştî ko gihaşt Panamayê nexweş ket û nexweşiya wî qederê du mehan ajot. Di vê midetê de Maygoşî bi peyayine welê re dida û distand ko li cem polîsê ew peyayine bişibhe dihatin hesêb. Ji lewre teşkîlatên emêrîkanî yên casûsiyê da bûn pey wekîlkonsilê japonî.

Li 23ê Çiriya-paşîn 1941ê li gora rapora ko gihaşti bû hikûmeta Emêrîkayê Maygoşî casûsekî xeternak bû û hikûmeta wî ew bi wezîfeke mihim rêkiri bû Emêrîkayê.

Polîsên sirî ew du caran di dora kenalê de û li nîzingî hawizên ko vê paşiyê hati bûn çêkirin, dîti bûn. Ber bi dawiya vê mehê miraqibên emêrîkanî yên Panamayê bêtêleke şifrekirî girti bûn. Bêtêl ji bo casûsê « nimere: 72 » bû. Di bêtêlê de digotin, ji karê te mezinên te razî ne; her tiştê xwe hazir bike, li ser emirê ko tu ji me bistînî û di wextê ko emê şanî te bidin de divêt tu kenalê berhewa bikî.

Êdî ji emêrîkaniyan re diviya bû bizanin ev telêgraf ji kîjan hikûmetê dihat û casûsê « nimere 72 » kî ye. Li 2ê Kanûna-pêşîn serekê bercasûsiya emêrîkanî û zabitekî bilindpaye ji bo îşê telêgrafê hati bûn Panamayê. Li 3ê Kanûnê ji serekê bercasûsiyê re mektûbeke bêimza hati bû. Di wê mektûbê de digotin ko casûsê « nimere 72 » Otî Maygoşî, wekîlkonsilê japonî yê Panamayê ye. Xwediyê mektûbê jê pêve digot heke Maygoşî û hevalên wî beriya 7ê Kanûnê ne hatine girtin ewê xerabîne mezin bikin.

Sibetirê Otî Maygoşî çû bû ziyareta waliyê emêrîkanî û jê re goti bû ko ji ber scbebên sihî ji konsiliyê istîfa kiriye û dike vegere welatê xwe. Ji lewre hati bû nik walî da ko jê xatir bixwaze.

Herçî memûrên bercasûsiyê lîsta mirovên ko dikirin dest daniyana ser hazir kiri bûn û li 6ê Kanûnê, wextê eşayê Maygoşî û hevalên wî dê bigirtana.

Maygoşî berî girtina xwe bi çend saetan bi niyeta hikûmetê hesiya û bi balafirekê terka Panamayê da û xwe gihande Emêrîka nîvro.

Herçî hevalên wî tev de hatine girtin. Bi wan re hin xerîteyên kenalê û dînamît jî hate dîtin. Hevalên Maygoşî mikur batine û her tişt gotine. Ji gotinên wan xuya dikir ko Maygoşî ji Tokyoyê emir girti bû ko li 6-7 Kanûnê bi nîvê şevê ve kenala Panamayê berhewa bike. Maygoşî li gora wî emirî haziriya xwe kiri bû û talîmatin da bûn peyayên xwe.

Ji xwe li 6-7 Kanûnê japonan ji nişkekê ve dirêjî Emêrîkayê kiri bû; avêti bû ser Perlharbûrê.

Tiştê ko rojmayên emêrîkanî gotiye ev e. Ji aliyê japonan jî qala Maygoşî dikin. Radyowa japonî da zanîn ko Maygoşî bêî ko wezîfa xwe bi cih bîne terka Panamayê daye. Ji lewre ew bi xwe û sê hevalên wî bi îdamê mehkûm bûne û hirakîrî kirine. Yanî xwe bi xencerên xwe kuştine.

Rojnameyên emêrîkanî ev nûçe jî belav kirine. Lê dibêjin ev nûçe ne rast e, Maygoşî zindî ye, ev hîleke japonan e; da ko memûrên me şaş bikin û şopa peyayê xwe winda bikin.

QADIRÊ FERMAN

---

Kiriyariya Hawarê:
Ji bo Sûriyê 5 lîreyên sûri - Ji bo welatên din lireki ingilîzî
Xwedî û gerinendeyê bepirsiyar: Mîr Celadet Alî Bedir-Xan, Şam—Sûriye
Directeur Propriétaire: Emir Djéladet Aali Bedir-Khan, Damas-Syrie
ŞAM — ÇAPXANA TEREQIYÊ — 1943